

Wergera

# QUR'ANA PÎROZ

## Bi Zimanê Kurdî

| | |
|---|---|
| Navê Kitêbê: | **Wergera Qur'ana Pîroz Bi Zimanê Kurdî** |
| Werger: | Mele Huseyn Êsî, Mele Se'îd Girdarî, Mele Muhemmed Bêrkevanî |
| Redaksiyon: | Zana Farqînî, |
| Teshîha Erebî: | Mele Ebdusselam Bêcirmanî |
| Teshîh: | Mihemed Jiyan |
| Berg û Rûpelsazî: | Dawud Rêbiwar |
| Çapxane: | Ravza Yayıncılık ve Matbaacılık Davut Paşa Cad. Kale İş Merkezi No: 51/52 Topkapı İstanbul |
| ISBN: | 978-605-5402-12-9 |
| Sala Çapê: | Çapa 1. Tebax 2008, Çapa 2. Tebax 2011 |
| Navnîşan: | Pak Ajans Yayıncılık Ltd. Şti. Büyük Reşitpaşa Cad. Yümni İş Merkezi No: 22/29 Vezneciler |

**Navnîşana Xwestinê:**
Zeyrek Mah. İtfaiye Cad. No: 17/3
Fatih/İstanbul
Tlf: 0212 534 48 30 (Gsm) 0533 330 68 72

## PÊŞKÊŞIYA ÇAPA DUYEM

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

Hemd, bes ji Xwedê re ye. Ew Xwedayê ku di her dem û her cihî de, di her rewş û karî de ew bi xwe ye, bêhevpişk û hevta ye. Selat û selam li ser qasidê Xwedê be, ewê ku ji bo tevekê cin û mirovan bi mîzgînberî û hişyarkerî hatiye şandin.

Piştî demeke dûr û dirêj, bi xebateke zor û zehmet, Xwedê ji me re hesan kir ku em bi derêxistina meala pîroz -digel teqsîratî û kêmasiyan- serfiraz bûn. Di demeke nedirêj de xwendevanan bertek û rexneyên erênî-neyênî li xebatê girtin, vêca me jî ew di deftera bîranînê de tomar kirin, heyanî ku roja wê hat.

Ha ev roj, em dilşad û bextewer in ku dîsa bi xebateke hûr û kûr, bi hişekî rehet û vekirî, em vê mealê bi çapeke nû rapêşî ber destê gelê xwe dikin. Her çiqas ev berhem li ser navê me sê kesan be jî, lê di rastiya xwe de ew berhema gelek mela û zanayên kurd e ku di her firsetê de, ji bo ravekirina ayetan me ji wan sûde werdigirt û wan jî em pê serwext û rasterê dikirin.

Em hêvî dikin ku maneyên ayetan ji aliyê kurdî ve ji ya ewil bêhtir vekirî bin û bêhtir zelal û liherk bin.

Em ji xwendevanên hêja hêvî dikin ku ew bi çavê qebûlê lê binêrin. Ne bi sedema ku ev xebata me ye; ji ber ku ew raveya fermana Rebbê me bi zimanê gelê me ye. Lê belê em ji her rexne û îhtirazê re vekirî ne, em dizanin ku em xwedan xeletî û kêmasî ne. Vêca kî me bi kêmasîyên me agahdar bike û li ser ya rast me rasterê bike ew ji camêriya wî ye.

Li ser amamdekirina vê mealê em ji seydayên xwe re, ji dost û hevalên xwe re, ewên ku maddî û manewî ji me re bûne piştek û arîkar, bi taybet jî ji seyda Mele Bilalê Vezenanî re gelek sipas dikin.

Cehd û xebat ji me, encam û serkeftin ji Xwedê ye, lewra her kar û bar bi bal wî ve vedigerin. Gotina me ya herî dawî pesn û spasî her ji Xwedayê alemê re be.

**Lijneya Amadekar**

# FIHRISTA SÛREYAN
## (LI GORÎ RÊZA WAN YA DI QUR'ANÊ DE)



**Jêrenot**: Sûreyên ku ev (*) nîşan li ber wan hatin nivîsîn ew Medenî ne; li Medînê hatine xwarê, yên din jî Mekkî ne, li Mekkê hatine xwarê!

# سُورَةُ الْفَاتِحَةِ
مَكِّيَّةٌ

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ ﴿١﴾

اَلْحَمْدُ لِلّٰهِ رَبِّ الْعَالَم۪ينَۙ ﴿٢﴾ اَلرَّحْمٰنِ
الرَّح۪يمِۙ ﴿٣﴾ مَالِكِ يَوْمِ الدّ۪ينِۜ ﴿٤﴾
اِيَّاكَ نَعْبُدُ وَاِيَّاكَ نَسْتَع۪ينُۜ ﴿٥﴾
اِهْدِنَا الصِّرَاطَ الْمُسْتَق۪يمَۙ ﴿٦﴾ صِرَاطَ
الَّذ۪ينَ اَنْعَمْتَ عَلَيْهِمْۙ غَيْرِ
الْمَغْضُوبِ عَلَيْهِمْ وَلَا الضَّٓالّ۪ينَ ﴿٧﴾

وَهِيَ سَبْعُ اٰيَاتٍ



# SÛREYÊ FATÎHEYÊ

**Sûreyê Fatîheyê**, li Mekkê nazil bûye. Heft ayet in.

Ev sûre ji ber ku Sûreyê Qur'anê yê yekem e û Qur'ana Pîroz pê tê destpêkirin jê re "El-Fatîhe" yanî destpêk tê gotin.

Her wiha, ji bilî vî navî hinek navên wî yên din jî hene ku ev in: Ummulkîtab (Maka kitêbê), Şifa (derman), Esasul-Qur'an (Bingeha Qur'anê), Kenz (xezîne) û El-Hemd.

**Naveroka Sûre**

Sûreyê Fatiheyê, pêşgotina Qur'ana Pîroz e. Naveroka Qur'anê yekser tê de ye. Lewra Qur'ana Pîroz behsê ji sê mijarên bingehîn dike; bawerî, îbadet û metoda jiyanê ku ev her sê jî di Sûreyê Fatîheyê de mewcûd in.

Di bara fezîlet û giringiya vî sûreyî de, Pêxemberê Xwedê (s) wiha gotiye: "Kî nimêjekê bike, vêca tê de sûreyê Fatîheyê nexwîne nimêja wî betal e".

Ebu Seî'd kurê Mu'ella radighîne ku Pêxember (s) jê re gotiye: "Beriya ku tu ji mizgeftê derkevî ez ê te hînî sûreyê herî mezin ji yê Qur'anê bikim." Ebû Se'îd dibêjê: Pêxember bi destê min girt. Çi gava kir ku ji mizgeftê derkeve, min jê re got: Hey resûlê Xwedê! Te gotibû: Ez ê te fêrî sûreyê herî mezin ji yê Qur'anê bikim. Pêxember got: "Belê. Ew sûreyê El-Hemdulillahî ye. Ew, heft ayetên Qur'ana Mezin e ya ku ji bo min hatiye hinartin, ew ayetên ku her tim têne xwendin."

Ji Se'îd kurê Cubeyr hatiye rîwayetkirin, wî ji Îbnu Ebbas wisa ragihandiye: "Di navberekê de ku Resûlê Xwedê li nav me û Cibraîl jî li balê bû, ji ser xwe re dengek bihîst. Cibraîl berê xwe da jorê, li jor nihêrî û got: "Ev deriyek e, li asîmanan vebûye ku heta niha nehatibû vekirin." Cibrîl got: Ji wî deriyî melayîketek daket û hat bal Pêxember û jê re got: Mizgîn li te, du nûr ji bo te hatine şandin ku beriya te ji tu pêxemberekî din re nehatine şandin. Ew jî, Fatîhaya Qur'anê û dawîneyên Sûreyê Beqereyî ne. Tu kîjan herfê ji wan bixwînî (ku dua ne û tu wan duayan ji Rebbê xwe bikî) ew ê ji bo te bê dayîn.

اعوذ بالله من الشيطان الرجيم

Ez ji ber neqenciya şeytanê qewitî xwe davêjim ber penaha Xwedayê Bilind da ku nehêle zirarê bide dîn û dinya min û nehêle ku ew min ji erk û wezîfeya min vegerîne, keysê nede wî ku ew li ser fikr û ramanên min bibe desthilatdar.

**1-** Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn.

**2-** Hemd (pesn û spasî) ji Xwedê re be ku ew perwerdegarê 'alemê ye.

**3-** (Ew Xwedayê ku) Rehman e (li dinyayê merhemetê li her kesî dike) û Rehîm e (li axretê rehma xwe bes li mumînan dike, wan dibe bihiştê).

**4-** (Ew ê ku) Xwediyê roja hesabdîtin û cizadanê ye.

**5-** (Xwedayê min!) Em her ji bo te tenê îbadetê dikin û em her ji te arîkariyê dixwazin.

**6-** (Xwedayê min!) Li ser riya rast û durist me rasterê bike (me pê serwext bike û li serê bihêle)...

**7-** Li ser riya wan kesên ku te qencî û dilşadî daye wan (rasterê bike); ne li ser riya wan kesên ku xezeb li wan bûye û ne li ser riya wan kesên ku riya heq winda kirine.

Amîn! (Ya Rebî! Du'ayê me qebûl bike.)

**Şîrove:** Xwedê, kitêba xwe ya pîroz bi besmeleyê dest pê kiriye. Bi vî awayî rê nîşanî bendeyên xwe daye ku ew jî karên xwe pê vekin û dest pê bikin. Di hedîsa şerîf de hatiye ragihandin ku: "Çi qas karekî xwedî şeref hebe û bi navê Xwedê (bi besmeleyê) neyê destpêkirin, ew bêbereket e."

Naxwe maneya besmeleyê dibe ev; ez, bi navê Xwedayê Rehman ê Rehîm dest bi karê xwe dikim. Ez, bi ferman, arîkarî û qudreta Xwedê û bi rizaya wî vî karî dikim; ne ji bo daxwaza nefsa xwe û arezûyên wê. Ev qudreta ku pê ev kar hatiye kirin ji Xwedê ye. Heke Wî, hêz û arîkarî nedabûya min, min dê hîç nikarîbûya tiştekî bikim. Ez, xwe ji vê yeka ku karê min, bi navê min be dûr dikim û diparêzim; ez tenê bi navê Xwedê dest pê dikim. Lewra min hêz û arîkariya xwe hemû ji wî girtiye.

Naxwe, hukim, qanûn, exlaq, rêz û tore û şîretên ku di Qur'ana Kerîm de hatin, ew tev yên Xwedê ne, ji cem wî ne, ji xeynî wî tiştek tune ye. Bi kurtasî wiha gotiye: Ya Muhemmed! Vî sûreyî, bi navê Xwedayê Rehman ê Rehîm bixwîne. Yanî bixwîne ku ew ji cem Xwedê ye, ne ji cem te ye. Birastî Xwedê ji te re şandiye da ku tu pê tişta ku qencî û bextewariya mirovan a dinya û axretê tê de ye, nîşanî wan bidî.

Her wiha Resûlê Ekrem (s) armanca xwe ji xwendina xwe ya Qur'ana Kerîm bi ummeta xwe dida zanîn ku; ew, bi navê Xwedê ji wan re dixwîne, ne bi navê tu kes û tu tiştekî dîtir. Dîsa dida zanîn ku ew ji cem Xwedê ye; ne ku ji cem wî bi xwe ye. Bes wezîfeya wî ew e ku ji Rebbê xwe radigihand û hew! Wekî ku ev heqîqet di gotina wî bi xwe de jî hatiye îfadekirin: "Li min hatiye fermankirin ku teslîmî fermana Rebbê xwe bibim û Qur'anê bixwînim. Vêca kî îmanê bîne ew ji bo xwe îmanê tîne û kî îmanê neyîne, jê re bibêje: Ez ji pêxemberên hişyarker im."

**Hemd**: Wesfa rind, senaya pir, spasiya kamil û salixên bêdawîn tenha xas û babetê Xwedê ne. Lewra hemû rindî lê vedigere. Her sena û pesna rind ji Xwedê tenê re ye. Lewra yê ku tevekê alemê li hev radigre û ji pêşiya wan heta bi paşiya wan, wan perwerde û xwedî dike û ya ku qencî û rizgariya wan tê de ye hînî wan dike her ew e. Ji bo rênîşandana wî hemd jê re be û ji bo hemû ni 'metên wî yên xuyayî û nihênî şukir jê re be!

**Rehman**: Yê ku hemû ni 'metan dide, bêsînor û bêdawîn qenciyê li bende û mexlûqên xwe dike. Ev wesfê şîrîn xaśê bi Xwedê ve ye û hîç qet cuda nabe.

**Rehîm**: Yê ku wesfê rehmetê jê re sabit e.

**Yewmiddîn**: **Yewm**, roj e. **Dîn,** Maneya wê ya ferhengî; hesab e, ceza ye, ango xelat û celat e. Ji Roja Dîn mebest; roja qiyametê ye ku Xwedê dê hemû bende û mexlûqên xwe, li gorî kirin û karên wan ceza bike. Heke kiryarên wan qencî bin dê xelat û padaşê bide wan û heke kiryarên wan neqencî bin -ji bilî yên ku li wan bibore û tobeya wan qebûl bike- dê wan ceza û seza bike. Peyva **Dîn** di hedîsa şerîf de jî bi maneya hesabê bi kar hatiye. Pêxemberê Xwedê wisa ferman kiriye: "**El-keyyisu men dane nefseh**" aqilmend ew kes e ku hesabê nefsa xwe bide dîtin. Ev dana hesabê exlaqekî Îslamî ye ku di bara wî de Umer (r) gotiye: *"Beriya hesabê we bête dîtin hûn xwe bikêşin hesabê. Beriya 'emelê we bête kêşandin hûn' hûn emelê xwe bikêşin û xwe ji rapêşiya mezin a li cem wî Xwedayê ku tiştek li berê veşartî namîne, amade bikin."*

**Ew ên ku te ni'met li wan kirî;** Pêxember, şehîd, yên rast û salih in. Ni'meta mezin a ku Xwedê li wan kiriye ew e ku ew ji rêşaşiyê muhafeze kirine.

**Ew kesên ku xezeb li wan bûyî:** Ew kesên ku heqiyê nas dikin lê qebûl nakin; mîna cihûyan.

**Ew kesên ku jirêderketî ne:** Ên ku riya heq hîç nas nekirine, ji lew ketine riya çewt û şaş; mîna filehan.

سُورَةُ الْبَقَرَةِ
مَدَنِيَّةٌ

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

الٓمٓ ۚ ﴿١﴾ ذٰلِكَ الْكِتَابُ لَا رَيْبَ ۚ فِيهِ ۚ هُدًى
لِلْمُتَّقِينَ ۙ ﴿٢﴾ اَلَّذِينَ يُؤْمِنُونَ بِالْغَيْبِ وَيُقِيمُونَ
الصَّلٰوةَ وَمِمَّا رَزَقْنَاهُمْ يُنْفِقُونَ ۙ ﴿٣﴾ وَالَّذِينَ
يُؤْمِنُونَ بِمَٓا اُنْزِلَ اِلَيْكَ وَمَٓا اُنْزِلَ مِنْ قَبْلِكَ ۚ
وَبِالْاٰخِرَةِ هُمْ يُوقِنُونَ ۙ ﴿٤﴾ اُولٰٓئِكَ عَلٰى هُدًى
مِنْ رَبِّهِمْ وَاُولٰٓئِكَ هُمُ الْمُفْلِحُونَ ﴿٥﴾

وَهِيَ مِائَتَانِ وَسِتٌّ
وَثَمَانُونَ اٰيَةً



# SÛREYÊ BEQERE

Sûreyê Beqere, li Medînê nazil bûye, du sed û heştê û şeş (286) ayet in.

Di Qur'anê de Sûreyê herî dirêj Beqere ye. Her wekî yê kurttirîn jî Kewser e. Sûre, navê xwe ji ayetên 67-71'an girtiye ku di wan de bêjeya "Beqere" derbas bûye û bi maneya "çêlekê" ye.

**Naveroka Sûre:** Sûreyê Beqere, ji pêşgotinek, sê mijaran û dawîneyekê pêk tê.

Pêşgotin, bîst ayet e û mirovan li sê beşan parve dike: Mutteqî, Kafir û Munafiq.

Di pênc ayetên pêşîn de behsa mutteqiyan, di du ayetên li pey wan de behsa kafiran û di sêzdeh ayetên li pey wan de jî behsa munafiqan tê kirin.

**Mijara yekem**: Ji ayeta 21ê heta ayeta 167an bi dorfirehî wesfên mutteqiyan rave dike.

**Mijara duyem:** Ji ayeta 168an heta ayeta 207an bi dorfirehî behsa kafiran dike.

**Mijara sêyem**: Ji ayeta 208an heta ayeta 284an bi dorfirehî munafiqan nîşan û kifşe dike.

**Dawîne jî:** Ji her du ayetên paşîn pêk tê.

Sûreyê Beqere, bi piranî li ser aliyê dadwerî (hiqûqî) radiweste. Kêşeya hiqûqî û risteyî çareser dike ku di jiyana xwe ya civakî de pêdiviya mislimanan pir bi wan heye.

Ev sûre, di nava xwe de piraniya hukmên Îslamê (eqîde, îbadet, dan û standinan, exlaq, zewac, jinberdan û hwd.) vedihewîne.

Sûre, pişt re behsa destpêka xulqandinê û qiseya bavê mirovan Adem (e) dike. Her wiha behsa wan rûdanên balkêş dike ku li cem pêkhatina wî rû dane. Ev rûdan nîşan didin ku Xwedê çiqas pir qîmet daye cinsê însên!

Sûre, pişt re behsa xwedî kitêban –ku fileh û cihûne, bi taybetî jî behsa cihûyan- dike. Mislimanan li hemberî exlaqên wan ên pîs wekî; xiyanethezî, xedir, lomekarî û peymanşikandinê hişyar dike. Xetera wan a ji bo muminan radigîhîne.

Sûre, pişt re behsa qiseya çêlekê dike, ku di nav cihûyan de zilamek hatibû kuştin û qisasê wî nediyar bû. Vêca wan ev rewş ji Nebî Mûsa (e) erz kirin da ku mêrkujê wî ji wan re eşkere bike. Xwedê wehî jê re şand, jê re got: ji wan re bibêje, bila çêlekekê serjê bikin û parçeyek ji goştê wê di laşê kuştî bidin. Bi destûra Xwedê Teala, kuştî dê sax bibe û dê mêrkujê xwe ji wan re diyar bike. Dawiya dawîn çêlekê serjê dikin û azayekî wê li bedena kuştî didin, sax dibe û radibe navê mêrkujî dibêje. Vêca ji bo vê qiseya balkêş navê vî Sûreyê pîroz bûye "El-Beqere" yanî; çêlek. Ji bo ku ev rûdan her tim li ber çavê muminan zindî bimîne. Her wiha ev mûcîze ji wan re delîl e ku Xwedê dikare mirovan piştî mirinê dîsa sax bike.

Sûre, bi dorferehî behsa hukmên rojiyê, hecê, 'umrê, cîhadê, kar û barên malbatî û herambûna mehrkirina jinên muşrik, dike.

Sûre, pişt re behsa herambûna ribayê (selefê) dikê. Her wiha dide zanîn ku Xwedayê Bilind û Pêxemberê wî li hember ribaxwer û arîkerên wan îlana cengê kirine.

Sûre -piştî ayetên ribayê- mislimanan li hemberî wê roja cansoj; roja qiyametê hişyar dike ku di wê rojê de mirov, li gorî kar û xebata xwe tê cezakirin. Heke kirinên wî qencî bin ew dê xelatê wergire. Heke kirinên wî neqencî bin ew dê bibe sezawarê qehrê.

Sûre, paşê gazî mislimanan dike ku ew tobe bikin, lavelavê ji Xwedê bikin û li hemberî kafir û heqveşêran arîkariyê ji wî bixwazin. Çawa ku sûre, bi wesfên bawermendan dest pê dike herwiha bi duaya muminan jî dawî dibe. Yanî serê sûre û dawiya wî bi hev re ahengsaz û pêwendîdar in!

بسم الله الرحمن الرحيم

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn**

**1- Elîf. Lam. Mîm!**

*Şîrove:* Di destpêka hin sûreyên Qur'anê de hin herfên ku ji wan re "Hurûful Muqette'e (herfên kite kitayî)" tê gotin hene. Ev herf bi navê xwe têne xwendin û dawiya wan sekin in; bê ser, bê jêr û bê ber in.

**a** ) Ev herf, di serî de tên, muxatebî (berpeyvî) hişyar dikin da ku bala wî bikşînin ser wesfê Qur'anê.

**b**) Ev herf, î'caza Qur'anê nîşan didin û li hemberî xwedîkitêban delîlan tînin, balê dikşînin ser hukm û qanûnên ku di nav sûreyî de tên.

**c**) Ev herf, nîşan didin ku Qur'ana Pîroz ji cinsê van herfan pêk hatiye û ew herf di nav dijber û muxatabên wê de, anku di nav muşrikên Mekkê de jî hebûn. Qur'anê ji wan re ne careke tenê, pir caran digot: "De hûn jî kitêbeke wekî wê, deh sûreyên wekî sûreyên wê an jî sûreyekî wekî yên wê bînin." Lê vê bangê ew bêçare dihiştin û wan nikarîbû bersiva wê bidin û têk diçûn.

**d**) Qur'ana Kerîm herf û bêjeyên ku mirov wan bi lêv dikin, kelam û weznan ji wan çêdikin. Xwedê jî Qur'anek wisa ji van herf û bêjeyan pêk aniye ku heq û batilî ji hev vediqetîne û mirovatiyê dighîne bextiyariya dinya û axretê.

**e**) Qur'an nîşan dide ku perwerdehî bi van herfan dest pê dike û wisa berdewam bibe.

**2-** Ev Qur'an, qet tê de guman nîn e ku ji cem Xwedê Teala ye, ew ji mutteqiyan re rêber e.

**Mutteqî:** Ew kes in ku hay ji ferman û qedexeyên Xwedê Teala hene; fermanên wî pêk tînin, xwe ji qedexeyên wî vedikişînin û xwe ji rehma wî bêhêvî nakin.

**3-** Ew mutteqiyên ku bi xeybê (ya nependî) baweriyê tînin û bi tekûzî nimêjê dikin û ji risqê ku me daye wan (di riya Xweda de) xerc dikin.

**Xeyb,** kurtegotina Îmanê ye. Maneya wê bawerîanîna bi Xwedê, bi melayîketên wî, bi kitêbên wî, bi pêxemberên wî, bi roja axretê û bi Qederê ye.

**4-** Ew mutteqiyên ku bi kitêba ji te re û bi kitêbên ku ji pêxemberên beriya te re hatine şandin û bi axretê ji dil û can bawerî tînin.

**5-** Ha ew in, ên ku ji aliyê Xwedayê xwe ve hatine ser rêka rast û ew in ên serfiraz.

إِنَّ الَّذِينَ كَفَرُوا سَوَاءٌ عَلَيْهِمْ ءَأَنْذَرْتَهُمْ أَمْ لَمْ تُنْذِرْهُمْ
لَا يُؤْمِنُونَ ﴿٦﴾ خَتَمَ اللّٰهُ عَلٰى قُلُوبِهِمْ وَعَلٰى سَمْعِهِمْ وَعَلٰى
أَبْصَارِهِمْ غِشَاوَةٌ وَلَهُمْ عَذَابٌ عَظِيمٌ ﴿٧﴾ وَمِنَ النَّاسِ
مَنْ يَقُولُ اٰمَنَّا بِاللّٰهِ وَبِالْيَوْمِ الْاٰخِرِ وَمَا هُمْ بِمُؤْمِنِينَ ﴿٨﴾
يُخَادِعُونَ اللّٰهَ وَالَّذِينَ اٰمَنُوا وَمَا يَخْدَعُونَ إِلَّا أَنْفُسَهُمْ
وَمَا يَشْعُرُونَ ﴿٩﴾ فِي قُلُوبِهِمْ مَرَضٌ فَزَادَهُمُ اللّٰهُ مَرَضًا
وَلَهُمْ عَذَابٌ أَلِيمٌ بِمَا كَانُوا يَكْذِبُونَ ﴿١٠﴾ وَإِذَا قِيلَ لَهُمْ
لَا تُفْسِدُوا فِي الْأَرْضِ قَالُوا إِنَّمَا نَحْنُ مُصْلِحُونَ ﴿١١﴾
أَلَا إِنَّهُمْ هُمُ الْمُفْسِدُونَ وَلٰكِنْ لَا يَشْعُرُونَ ﴿١٢﴾ وَإِذَا
قِيلَ لَهُمْ اٰمِنُوا كَمَا اٰمَنَ النَّاسُ قَالُوا أَنُؤْمِنُ كَمَا اٰمَنَ السُّفَهَاءُ
أَلَا إِنَّهُمْ هُمُ السُّفَهَاءُ وَلٰكِنْ لَا يَعْلَمُونَ ﴿١٣﴾ وَإِذَا لَقُوا الَّذِينَ
اٰمَنُوا قَالُوا اٰمَنَّا وَإِذَا خَلَوْا إِلٰى شَيَاطِينِهِمْ قَالُوا إِنَّا مَعَكُمْ
إِنَّمَا نَحْنُ مُسْتَهْزِؤُنَ ﴿١٤﴾ اَللّٰهُ يَسْتَهْزِئُ بِهِمْ وَيَمُدُّهُمْ فِي
طُغْيَانِهِمْ يَعْمَهُونَ ﴿١٥﴾ أُولٰئِكَ الَّذِينَ اشْتَرَوُا الضَّلَالَةَ
بِالْهُدٰى فَمَا رَبِحَتْ تِجَارَتُهُمْ وَمَا كَانُوا مُهْتَدِينَ ﴿١٦﴾

مَثَلُهُمْ

**6**- Bêguman ew ên ku kafir bûne, ji wan re wekhev e; çi tu wan (bi ezabê Xwedê) bitirsînî çi tu wan netirsînî, her ew îmanê nayînin.

**7**- Xwedê dil û guhên wan mor kiriye, li ser çavên wan perde heye û teqez ji bo wan ezabekî mezin heye.

**8**- Ji mirovan hin dibêjin: "Me bi Xwedê û bi roja axretê bawerî anî," hal ev e ku ew baweriyê nayînin.

**9**- Ji wan we ye ku ew Xwedê û yên ku bawerî anîn dixapînin. Hal ev e ku ew xwe dixapînin û haya wan ji vê jî nîn e.

**10**- Di dilê wan de nexweşî(ya nîfaqê) heye, vêca Xwedê jî nexweşiya wan zêde kir. Ji ber derew û durûtiya ku dikin, ji bo wan ezabekî dijwar heye.

**11**- Dema ji wan re tê gotin: "Li ser erdê fesadiyê nekin!" Dibêjin: "Em bes çaksaz û qencîker in."

**12**- Agahdar bin, birastî jî yên ku fesadiyê dikin her ew bi xwe ne, lê belê ew tênagihîjin.

**13**- Dema ji wan re tê gotin: "Hûn jî îmanê bînin ka çawa xelkê îman aniye." Dibêjin: "Erê, ma çawa em ê mîna aqilsivikan îmanê bînin?" Nexêr, wisa nîn e! Birastî aqilsivik her ew bi xwe ne, lê belê ew (bi xwe) nizanin.

**14**- Gava çavên wan bi yên bawermend dikeve, dibêjin: "Me jî bawerî aniye." Lê belê gava ew bi şeytanên xwe (yên hevrê) re bi tenê dimînin, dibêjin: "Em bi we re ne, bes em tinazên xwe bi wan dikin."

**15**- Birastî Xwedê Teala bi ezabê xwe tinazên wan li wan vedigerîne û di kufra wan de demeke dirêj muhletê dide wan û wan dermande û heyirî dihêle.

**16**- Ha ev, ew ên ku bi (bedêla) hîdayetê rêşaşî kirîne, bes vê kirîn firotina wan kar neaniye û ew bi ser rêka rast ve jî nebûne.

مَثَلُهُمْ كَمَثَلِ الَّذٖى اسْتَوْقَدَ نَارًا فَلَمَّا اَضَاءَتْ مَا حَوْلَهُ ذَهَبَ
اللّٰهُ بِنُورِهِمْ وَتَرَكَهُمْ فٖى ظُلُمَاتٍ لَا يُبْصِرُونَ ﴿١٧﴾ صُمٌّ بُكْمٌ عُمْىٌ
فَهُمْ لَا يَرْجِعُونَ ﴿١٨﴾ اَوْ كَصَيِّبٍ مِنَ السَّمَاءِ فٖيهِ ظُلُمَاتٌ
وَرَعْدٌ وَبَرْقٌ يَجْعَلُونَ اَصَابِعَهُمْ فٖى اٰذَانِهِمْ مِنَ الصَّوَاعِقِ
حَذَرَ الْمَوْتِ وَاللّٰهُ مُحٖيطٌ بِالْكَافِرٖينَ ﴿١٩﴾ يَكَادُ الْبَرْقُ
يَخْطَفُ اَبْصَارَهُمْ كُلَّمَا اَضَاءَ لَهُمْ مَشَوْا فٖيهِ وَاِذَا اَظْلَمَ
عَلَيْهِمْ قَامُوا وَلَوْ شَاءَ اللّٰهُ لَذَهَبَ بِسَمْعِهِمْ وَاَبْصَارِهِمْ
اِنَّ اللّٰهَ عَلٰى كُلِّ شَیْءٍ قَدٖيرٌ ﴿٢٠﴾ يَا اَيُّهَا النَّاسُ اعْبُدُوا رَبَّكُمُ
الَّذٖى خَلَقَكُمْ وَالَّذٖينَ مِنْ قَبْلِكُمْ لَعَلَّكُمْ تَتَّقُونَ ﴿٢١﴾ اَلَّذٖى
جَعَلَ لَكُمُ الْاَرْضَ فِرَاشًا وَالسَّمَاءَ بِنَاءً وَاَنْزَلَ مِنَ السَّمَاءِ مَاءً
فَاَخْرَجَ بِهٖ مِنَ الثَّمَرَاتِ رِزْقًا لَكُمْ فَلَا تَجْعَلُوا لِلّٰهِ اَنْدَادًا
وَاَنْتُمْ تَعْلَمُونَ ﴿٢٢﴾ وَاِنْ كُنْتُمْ فٖى رَيْبٍ مِمَّا نَزَّلْنَا عَلٰى
عَبْدِنَا فَاْتُوا بِسُورَةٍ مِنْ مِثْلِهٖ وَادْعُوا شُهَدَاءَكُمْ مِنْ دُونِ
اللّٰهِ اِنْ كُنْتُمْ صَادِقٖينَ ﴿٢٣﴾ فَاِنْ لَمْ تَفْعَلُوا وَلَنْ تَفْعَلُوا فَاتَّقُوا
النَّارَ الَّتٖى وَقُودُهَا النَّاسُ وَالْحِجَارَةُ اُعِدَّتْ لِلْكَافِرٖينَ ﴿٢٤﴾

**17**- Rewşa wan (munafiqan) eynî wekî rewşa wî kesî ye ku (di şeva tarî de) agir vêxistibe. Çi dema agir vêket û ronahî da hawîrdora wî; ji nişka ve Xwedê Teala (agirê wan vemirand) ronahiya wan bir û ew bi awayê ku tiştekî nabînin di tarîtiyê de hiştin.

**18**- Ew (munafiq) ker in (heqiyê nabihîzin), lal in (behsa heqiyê nakin), kor in (heqiyê nabînin), vêca (piştî ku heqî nas kirin jî ji pûçiya xwe) ew venagerin.

**19**- Yan jî halê wan mîna halê wan kesan e ku ew rastî tavebaranekê bên ku tê de tarîtî, gurmegrum û birûsk hene. Ew ji ber gurmîniya birûskan, ji tirsa mirinê tiliyên xwe dixin guhên xwe. Xwedê Teala (bi zanîna xwe) dor li kafiran girtiye (êdî xelasiya wan tune ye).

**20**- Di vê navê de birûsk vedide mîna ku çavên wan birijîne. Çi gava dora wan ronahî kir, ew hinekî dimeşin û çi gava li wan tarî dibe radiwestin. Eger Xwedê Teala bixwesta, muheqeq dê çavên wan kor û guhên wan ker bikirana. Bêguman Xwedê Teala li ser her tiştî qadir e.

**21**- Gelî mirovan! Hûn ji bo wî Xwedayê ku hûn û yên beriya we afirandin îbadetê bikin, da ku hûn (ji ezabê Xwedê) xwe biparêzin.

**22**- Ew Xwedayê ku erd ji bo we raxistiye kiriye doşek, esman jî kiriye avahiyeke qehîm û ji bo we ji ewran av daxistiye ser erdê. Bi wê avê jî, ji bo we texlîtên fêkiyan ji erdê derxistine. Naxwe tu hevpişkan (şirîkan) ji Xwedê re çênekin! Rewş ev e, hûn bi xwe dizanin (ku ew ne dikarin tiştekî bixuliqînin ne jî dikarin rizqê tu kesî bidin).

**23**- (Gelî mirovan!) Eger ku hûn di bara vê Qur'anê de ya ku me ji bo evdê xwe şandiye gumandar bin, naxwe eger bira hûn rast dibêjin de hûn jî sûreyekî mîna wê bînin û ji bilî Xwedê bangî piştevanên xwe jî bikin (da ku ji we re bibin piştek û arîkar).

**24**- Eger we ev nekir -jixwe hûn nikarin bikin jî- naxwe, xwe ji wî agirê ku ardûyên wî însan û kevir in biparêzin ku ew ji kafiran re hatiye amadekirin.

وَبَشِّرِ الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ اَنَّ لَهُمْ جَنَّاتٍ
تَجْر۪ي مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ كُلَّمَا رُزِقُوا مِنْهَا مِنْ ثَمَرَةٍ
رِزْقًا قَالُوا هٰذَا الَّذ۪ي رُزِقْنَا مِنْ قَبْلُ وَاُتُوا بِه۪ مُتَشَابِهًا
وَلَهُمْ ف۪يهَٓا اَزْوَاجٌ مُطَهَّرَةٌ وَهُمْ ف۪يهَا خَالِدُونَ ﴿٢٥﴾ اِنَّ
اللّٰهَ لَا يَسْتَحْي۪ٓ اَنْ يَضْرِبَ مَثَلًا مَا بَعُوضَةً فَمَا
فَوْقَهَا فَاَمَّا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا فَيَعْلَمُونَ اَنَّهُ الْحَقُّ مِنْ رَبِّهِمْ
وَاَمَّا الَّذ۪ينَ كَفَرُوا فَيَقُولُونَ مَاذَٓا اَرَادَ اللّٰهُ بِهٰذَا مَثَلًا
يُضِلُّ بِه۪ كَث۪يرًا وَيَهْد۪ي بِه۪ كَث۪يرًا وَمَا يُضِلُّ بِه۪ٓ اِلَّا
الْفَاسِق۪ينَ ﴿٢٦﴾ اَلَّذ۪ينَ يَنْقُضُونَ عَهْدَ اللّٰهِ مِنْ بَعْدِ
م۪يثَاقِه۪ وَيَقْطَعُونَ مَٓا اَمَرَ اللّٰهُ بِه۪ٓ اَنْ يُوصَلَ وَيُفْسِدُونَ
فِي الْاَرْضِ اُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الْخَاسِرُونَ ﴿٢٧﴾ كَيْفَ تَكْفُرُونَ
بِاللّٰهِ وَكُنْتُمْ اَمْوَاتًا فَاَحْيَاكُمْ ثُمَّ يُم۪يتُكُمْ ثُمَّ
يُحْي۪يكُمْ ثُمَّ اِلَيْهِ تُرْجَعُونَ ﴿٢٨﴾ هُوَ الَّذ۪ي خَلَقَ
لَكُمْ مَا فِي الْاَرْضِ جَم۪يعًا ثُمَّ اسْتَوٰٓى اِلَى السَّمَٓاءِ
فَسَوّٰيهُنَّ سَبْعَ سَمٰوَاتٍ وَهُوَ بِكُلِّ شَيْءٍ عَل۪يمٌ ﴿٢٩﴾

وَاِذْ قَالَ

**25**- Mizgînê bide wan ên ku bawerî anîn û karên qenc kirin; ku ji bo wan bihiştên wisa hene ku di binê (koşk û darfêkiyên) wan re çem diherikin. Çi gava mêweyeke wan bihiştan ji bo wan tê pêşkêşkirin, dibêjin: "Ev ji wan mêweyan in ku berî niha (li dinyayê) me xwaribû." Her çi ku bi şeklê xwe mîna hev in jî, lê belê di tehm û xweşiya xwe de cuda ne. Ji bo wan li bihiştê jinên pak hene û ew ê li bihiştê heta bi hetayê sax bimînin.

ʿEmelê salih ew e ku mirov heqê Xwedê û hiqûqê îbadan bîne cih. Bi gotineke din; mirov fermanên Xwedê bi cih bîne û xwe ji heraman biparêze, mirov her tiştê ku bi şerîʿet neheram be û feydê bide xelkê wî bike.

**26**- Bêguman Xwedê Teala ji xwe re kêmasiyê nabîne ku meseleya heqiyê bi pêşûyekê û bi tiştekî hê ji wê piçûktir jî eşkere bike. Herçî yên ku bawerî anîn, jixwe dizanin ku bi vî awayî dayîna mînakan heq e û ji cem Xwedayê wan e. Lê ew kesên ku kafir in, dibêjin: "Ma Xwedê bi vê mînakê çi qesd dike?" Xwedê, bi vê (mîsaldanê) gelek însanan ji rê derdixe û gelekan jî tîne ser riya rast. Xwedê, bi vê (mînakdanê) ji fasiqan pê ve tu kesê din ji rê dernaxe.

**27**- Ew (fasiq) ên ku piştî soza vebirî bi Xwedê re dane, soza xwe dişikînin û ew (hevegirêdana dînî û civakî) ya ku Xwedê bi hevgirêdana wê ferman kiriye dibirin û li ser rûyê erdê fesadiyê dikin. Ha ew, yên her xesirî bi xwe ne.

**28**- (Gelî kafiran!) Hûn çawa Xwedê Teala înkar dikin?! Hal ev e ku hûn berê (dilopek ava) mirî bûn, vêca Xwedê hûn sax kirin, paşê dê we bimirîne, paşê dîsa (roja qiyametê) dê we sax bike, piştî vê hûn ê bi balê ve vegerin (û hesabê xwe bidinê).

**29**- Ew Xwedayê ku çi tiştê li erdê heye tev ji bo we afirandine. Paşê bi awayekî xasê xwe li asîmanan vegeriya; vêca ew kir heft tebeq û sererast kir. Ew e, yê ku bi her tiştî dizane.

وَاِذْ قَالَ رَبُّكَ لِلْمَلٰٓئِكَةِ اِنّ۪ي جَاعِلٌ فِي الْاَرْضِ خَل۪يفَةًۜ قَالُٓوا
اَتَجْعَلُ ف۪يهَا مَنْ يُفْسِدُ ف۪يهَا وَيَسْفِكُ الدِّمَٓاءَۚ وَنَحْنُ نُسَبِّحُ
بِحَمْدِكَ وَنُقَدِّسُ لَكَۜ قَالَ اِنّ۪ٓي اَعْلَمُ مَا لَا تَعْلَمُونَ ﴿٣٠﴾ وَعَلَّمَ
اٰدَمَ الْاَسْمَٓاءَ كُلَّهَا ثُمَّ عَرَضَهُمْ عَلَى الْمَلٰٓئِكَةِ فَقَالَ اَنْبِـُٔون۪ي بِاَسْمَٓاءِ
هٰٓؤُ۬لَٓاءِ اِنْ كُنْتُمْ صَادِق۪ينَ ﴿٣١﴾ قَالُوا سُبْحَانَكَ لَا عِلْمَ لَنَٓا اِلَّا
مَا عَلَّمْتَنَاۜ اِنَّكَ اَنْتَ الْعَل۪يمُ الْحَك۪يمُ ﴿٣٢﴾ قَالَ يَٓا اٰدَمُ اَنْبِئْهُمْ
بِاَسْمَٓائِهِمْۚ فَلَمَّٓا اَنْبَاَهُمْ بِاَسْمَٓائِهِمْۙ قَالَ اَلَمْ اَقُلْ لَكُمْ اِنّ۪ٓي اَعْلَمُ
غَيْبَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۙ وَاَعْلَمُ مَا تُبْدُونَ وَمَا كُنْتُمْ تَكْتُمُونَ
﴿٣٣﴾ وَاِذْ قُلْنَا لِلْمَلٰٓئِكَةِ اسْجُدُوا لِاٰدَمَ فَسَجَدُٓوا اِلَّٓا اِبْل۪يسَۜ اَبٰى
وَاسْتَكْبَرَ وَكَانَ مِنَ الْكَافِر۪ينَ ﴿٣٤﴾ وَقُلْنَا يَٓا اٰدَمُ اسْكُنْ اَنْتَ
وَزَوْجُكَ الْجَنَّةَ وَكُلَا مِنْهَا رَغَدًا حَيْثُ شِئْتُمَاۖ وَلَا تَقْرَبَا هٰذِهِ
الشَّجَرَةَ فَتَكُونَا مِنَ الظَّالِم۪ينَ ﴿٣٥﴾ فَاَزَلَّهُمَا الشَّيْطَانُ عَنْهَا
فَاَخْرَجَهُمَا مِمَّا كَانَا ف۪يهِۖ وَقُلْنَا اهْبِطُوا بَعْضُكُمْ لِبَعْضٍ
عَدُوٌّۚ وَلَكُمْ فِي الْاَرْضِ مُسْتَقَرٌّ وَمَتَاعٌ اِلٰى ح۪ينٍ ﴿٣٦﴾ فَتَلَقّٰٓى
اٰدَمُ مِنْ رَبِّه۪ كَلِمَاتٍ فَتَابَ عَلَيْهِۜ اِنَّهُ هُوَ التَّوَّابُ الرَّح۪يمُ ﴿٣٧﴾

**30**- Bi bîr bîne, gava Xwedayê te ji melayîketan re got: "Birastî ez ê li ser erdê xelîfeyekî (ku yek têkeve şûna yê din) biafirînim." (Melayîketan) got: "Ma Tu yê mexlûqên ku li erdê fesadiyê bikin û xwînê birêjin, biafirînî?" Hal ev e ku em hemdê te dikin û Te pak didêrin. (Xwedê) got: "Tiştê ku hûn pê nizanin, ez dizanim."

**31**- Xwedê navê tevekê tiştan bi Adem da hînkirin. Paşê ew tişt nîşanî melayîketan dan û ji wan re got: "De navên van tiştan ji min re bibêjin, eger bera hûn rast dibêjin."

**32**- Melayîketan got: "Xwedayê me! Em, Te ji hemû kêmasiyan pak didêrin, ji tiştê te bi me dabe zanîn pê ve tu zanîneke me nîn e. Birastî her tu yî yê 'elîm, yê hekîm.

**33**- (Xwedê) got: "Hey Adem! De bi navên van tiştan melayîketan agahdar bike." Vêca çi gava Adem bi navên wan ew agahdar kirin, Xwedê got: "Ma qey min ji we re negotibû ku ez bi xeyba erd û asîmanan dizanim û ez bi tiştê ku hûn eşkere dikin û bi yên ku hûn vedişêrin jî dizanim?"

**34**- Wê demê me ji firîşteyan (melayîketan) re got: "Ji Adem re herin sicûdê." Ji bilî Îblîs hemû jê re çûne sicûdê. Ew neçû sicûdê, wî xwe mezin dêra û (ji ber vê yekê) ew bû ji kafiran.

**35**- Me got: "Hey Adem! Tu û hevala xwe (Hewa), li bihiştê bi cih bibin. Çawa dilên we bixwaze wisa bi efiyet ji xweşiyên wê bixwin û xwe nêzî vê dara hanê mekin, vêca (eger hûn nêzî wê bibin) hûn ê bibin ji zaliman."

**36**- Vêca Şeytên (bi ser de birina xeletiyê) ew şemitandin û ji cenetê, ji nav xweşiyên ku ew tê de bûn derandin. Me got: "De dakevin ji wir, hûn ê (mexsed pê mirov û şeytan in) ji hev re neyar bin. Heta hûn sax bin li erdê akincî bin û ji pêxweşiyên wê feydê wergirin.

**37**- Vêca Adem ji Xwedayê xwe hin peyv wergirtin (bi wan peyvan bi bal Xwedê ve tobe kir). Vêca Xwedê Teala jî tobeya wî qebûl kir. Bi rastî Xwedê, her tewwab e, rehîm e (pir tobepejrên û dilovîn e).

قُلْنَا اهْبِطُوا مِنْهَا جَمِيعًا فَاِمَّا يَأْتِيَنَّكُمْ مِنّى هُدًى فَمَنْ تَبِعَ
هُدَاىَ فَلَا خَوْفٌ عَلَيْهِمْ وَلَا هُمْ يَحْزَنُونَ ﴿٣٨﴾ وَالَّذِينَ كَفَرُوا
وَكَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا اُولٰئِكَ اَصْحَابُ النَّارِ هُمْ فِيهَا خَالِدُونَ
﴿٣٩﴾ يَا بَنِى اِسْرَائِيلَ اذْكُرُوا نِعْمَتِىَ الَّتِى اَنْعَمْتُ عَلَيْكُمْ وَاَوْفُوا
بِعَهْدِى اُوفِ بِعَهْدِكُمْ وَاِيَّاىَ فَارْهَبُونِ ﴿٤٠﴾ وَاٰمِنُوا بِمَا اَنْزَلْتُ
مُصَدِّقًا لِمَا مَعَكُمْ وَلَا تَكُونُوا اَوَّلَ كَافِرٍ بِهِ وَلَا تَشْتَرُوا
بِاٰيَاتِى ثَمَنًا قَلِيلًا وَاِيَّاىَ فَاتَّقُونِ ﴿٤١﴾ وَلَا تَلْبِسُوا الْحَقَّ بِالْبَاطِلِ
وَتَكْتُمُوا الْحَقَّ وَاَنْتُمْ تَعْلَمُونَ ﴿٤٢﴾ وَاَقِيمُوا الصَّلٰوةَ وَاٰتُوا
الزَّكٰوةَ وَارْكَعُوا مَعَ الرَّاكِعِينَ ﴿٤٣﴾ اَتَأْمُرُونَ النَّاسَ بِالْبِرِّ وَتَنْسَوْنَ
اَنْفُسَكُمْ وَاَنْتُمْ تَتْلُونَ الْكِتَابَ اَفَلَا تَعْقِلُونَ ﴿٤٤﴾ وَاسْتَعِينُوا
بِالصَّبْرِ وَالصَّلٰوةِ وَاِنَّهَا لَكَبِيرَةٌ اِلَّا عَلَى الْخَاشِعِينَ ﴿٤٥﴾ اَلَّذِينَ
يَظُنُّونَ اَنَّهُمْ مُلَاقُوا رَبِّهِمْ وَاَنَّهُمْ اِلَيْهِ رَاجِعُونَ ﴿٤٦﴾ يَا بَنِى
اِسْرَائِيلَ اذْكُرُوا نِعْمَتِىَ الَّتِى اَنْعَمْتُ عَلَيْكُمْ وَاَنّى فَضَّلْتُكُمْ
عَلَى الْعَالَمِينَ ﴿٤٧﴾ وَاتَّقُوا يَوْمًا لَا تَجْزِى نَفْسٌ عَنْ نَفْسٍ شَيْئًا
وَلَا يُقْبَلُ مِنْهَا شَفَاعَةٌ وَلَا يُؤْخَذُ مِنْهَا عَدْلٌ وَلَا هُمْ يُنْصَرُونَ ﴿٤٨﴾

وَاِذْ نَجَّيْنَاكُمْ

38- Me (ji wan re) got: “De hûn tev ji bihiştê dakevin ser erdê! Heke ji nik min pêxemberek ji we re bê, îcar kî ji we bide pey pêxemberê min, ji wan re tu tirs tune ye û ew dê xemgîn jî nebin.

39- Ew ên ku kafir bûn û bawerî bi ayetên me neanîn, ew xelkê dojehê ne. Ew dê heta hetayê li wir bimînin.

40- Gelî zaroyên Îsraîl! Qenciya min, ya ku min li we kiriye bînin bîra xwe. Ew peymana ku we daye min bi cih bînin, ez ê jî soza ku min daye we bînim cih û her ji min tenê bitirsin.

41- Baweriyê bi vê Qur’ana ku min şandiye bînin ku ew Tewrata di destê we de rast didêre. Zinhar! Nebin ji yên pêşîn ku Qur’anê înkar dikin! Ayetên min bi erzanî nefiroşin û bes xwe ji (ezabê) min biparêzin.

42- Heqiyê bi batilî kiras mekin û digel ku hûn dizanin jî heqiyê veneşêrin.

43- Berdewamî nimêjê bikin, zekata malê xwe bidin û bi nimêjkeran re nimêj bikin (yanî nimêja xwe bi cemaet bikin).

44- Erê ma hûn şîreta qenciyê li xelkê dikin û hûn xwe ji bîr dikin, digel ku hûn kitêbê (Tewratê) jî dixwînin, ma hûn aqil nagirin?

45- Bi sebrê û nimêjê arîkariyê (ji Xwedayê xwe) bixwazin. Muheqeq (nimêj) ji xwedêtirsan pê ve bi her kesî giran tê.

46- Ew (xwedêtirs) ên ku yeqîn bawer dikin ku ew ê bigihîjin Xwedayê xwe û birastî ew ê lê vegerin (û hesab bidinê).

47- Gelî zaroyên Îsraîl! Qenciya min a ku min li we kiribû bînin bîra xwe. Birastî min hûn di ser alemê re girtibûn.

48- Ji rojeke wisa bitirsin ku di wê rojê de kes havilê nade kesî, (bêyî destûra Xwedê Teala) mehderiya (şefaeta) tu kesî nayê qebûlkirin, ji tu kesî fîdye nayê wergirtin û arîkariya wan nayê kirin.

وَاِذْ نَجَّيْنَاكُمْ مِنْ اٰلِ فِرْعَوْنَ يَسُومُونَكُمْ سُٓوءَ الْعَذَابِ
يُذَبِّحُونَ اَبْنَٓاءَكُمْ وَيَسْتَحْيُونَ نِسَٓاءَكُمْ وَفٖى ذٰلِكُمْ بَلَٓاءٌ
مِنْ رَبِّكُمْ عَظٖيمٌ ﴿٤٩﴾ وَاِذْ فَرَقْنَا بِكُمُ الْبَحْرَ فَاَنْجَيْنَاكُمْ
وَاَغْرَقْنَٓا اٰلَ فِرْعَوْنَ وَاَنْتُمْ تَنْظُرُونَ ﴿٥٠﴾ وَاِذْ وٰعَدْنَا مُوسٰٓى
اَرْبَعٖينَ لَيْلَةً ثُمَّ اتَّخَذْتُمُ الْعِجْلَ مِنْ بَعْدِهٖ وَاَنْتُمْ ظَالِمُونَ ﴿٥١﴾
ثُمَّ عَفَوْنَا عَنْكُمْ مِنْ بَعْدِ ذٰلِكَ لَعَلَّكُمْ تَشْكُرُونَ ﴿٥٢﴾
وَاِذْ اٰتَيْنَا مُوسَى الْكِتَابَ وَالْفُرْقَانَ لَعَلَّكُمْ تَهْتَدُونَ ﴿٥٣﴾
وَاِذْ قَالَ مُوسٰى لِقَوْمِهٖ يَا قَوْمِ اِنَّكُمْ ظَلَمْتُمْ اَنْفُسَكُمْ
بِاتِّخَاذِكُمُ الْعِجْلَ فَتُوبُٓوا اِلٰى بَارِئِكُمْ فَاقْتُلُٓوا اَنْفُسَكُمْ
ذٰلِكُمْ خَيْرٌ لَكُمْ عِنْدَ بَارِئِكُمْ فَتَابَ عَلَيْكُمْ اِنَّهُ هُوَ التَّوَّابُ
الرَّحٖيمُ ﴿٥٤﴾ وَاِذْ قُلْتُمْ يَا مُوسٰى لَنْ نُؤْمِنَ لَكَ حَتّٰى نَرَى اللّٰهَ
جَهْرَةً فَاَخَذَتْكُمُ الصَّاعِقَةُ وَاَنْتُمْ تَنْظُرُونَ ﴿٥٥﴾ ثُمَّ بَعَثْنَاكُمْ
مِنْ بَعْدِ مَوْتِكُمْ لَعَلَّكُمْ تَشْكُرُونَ ﴿٥٦﴾ وَظَلَّلْنَا عَلَيْكُمُ
الْغَمَامَ وَاَنْزَلْنَا عَلَيْكُمُ الْمَنَّ وَالسَّلْوٰى كُلُوا مِنْ طَيِّبَاتِ
مَا رَزَقْنَاكُمْ وَمَا ظَلَمُونَا وَلٰكِنْ كَانُٓوا اَنْفُسَهُمْ يَظْلِمُونَ ﴿٥٧﴾

**49**- Bînin bîra xwe gava me hûn ji Firewn û ehlê wî rizgar kirin. Wan hûn li ezabê herî dijwar diçêrandin; kurên we dikuştin, keçên we (ji bo xizmetê) sax dihiştin û di vê yekê de (di rizgarkirina ji vê azarê de), ji nik Xwedayê we, ji bo we îmtîhaneke mezin hebû.

**50**- Her wisa di bîra xwe bînin gava me ji bo we derya kir du şeq, vêca me hûn rizgar kirin, me Firewn û ehlê wî xeniqandin û we li vê (dîmenê) temaşe dikir.

**51**- Her wisa di bîra xwe bînin wexta me peymana çil şevî da Mûsa û we di pey wî re golik kire îlah (û we jê re îbadet kir) û bi vî awayî we li xwe zilim kir.

**52**- Piştî vê (bizava we ya nankorane) me hûn efû kirin da ku hûn şukrê Xwedayê xwe bikin.

**53**- Her wisa di bîra xwe bînin gava me kitêb û furqan (ya heq û batil ji hev cuda dike) da Mûsa da ku hûn bêne ser riya rast.

**54**- Her wiha di bîra xwe bînin gava Mûsa ji gelê xwe re got: "Hey gelê min! We bi îbadetkirina ji golikê re li xwe zilim kir, vêca tobe bikin; li Xwedayê xwe vegerin û nefsa xwe bikujin. Ev, ji bo we li nik afirînerê we çêtir e." Vêca Xwedê Teala tobeya we qebûl kir. Bêguman Ew e yê zêde tobepejrên û yê dilovîn.

**55**- Her wisa di bîr bînin gava we got: "Hey Mûsa! Heya ku em bi çavên xwe Xwedê Teala eşkere nebînin em baweriyê bi te nayînin." Vêca ji nişka ve birûskê li we da û we bi bêhişane lê temaşe dikir.

**56**- Piştî mirina we, me hûn sax kirin da ku hûn spasî(ya ni'metên Xwedê) bikin.

**57**- Me ewr li ser we kirin sî û sîwan, me gezo û goştê sûsikê ji we re daxist û (me ji we re got:) "De rizqê pak û xweş ê ku me dayî we bixwin." Bi rastî wan li me zilm nekir; lê belê wan her li xwe zilim kiriye.

وَاِذْ قُلْنَا ادْخُلُوا هٰذِهِ الْقَرْيَةَ فَكُلُوا مِنْهَا حَيْثُ شِئْتُمْ
رَغَدًا وَادْخُلُوا الْبَابَ سُجَّدًا وَقُولُوا حِطَّةٌ نَغْفِرْ لَكُمْ
خَطَايَاكُمْ وَسَنَزٖيدُ الْمُحْسِنٖينَ ﴿٥٨﴾ فَبَدَّلَ الَّذٖينَ ظَلَمُوا
قَوْلًا غَيْرَ الَّذٖي قٖيلَ لَهُمْ فَاَنْزَلْنَا عَلَى الَّذٖينَ ظَلَمُوا رِجْزًا
مِنَ السَّمَٓاءِ بِمَا كَانُوا يَفْسُقُونَ ﴿٥٩﴾ وَاِذِ اسْتَسْقٰى مُوسٰى
لِقَوْمِهٖ فَقُلْنَا اضْرِبْ بِعَصَاكَ الْحَجَرَ فَانْفَجَرَتْ مِنْهُ اثْنَتَا
عَشْرَةَ عَيْنًا قَدْ عَلِمَ كُلُّ اُنَاسٍ مَشْرَبَهُمْ كُلُوا وَاشْرَبُوا
مِنْ رِزْقِ اللّٰهِ وَلَا تَعْثَوْا فِي الْاَرْضِ مُفْسِدٖينَ ﴿٦٠﴾ وَاِذْ
قُلْتُمْ يَا مُوسٰى لَنْ نَصْبِرَ عَلٰى طَعَامٍ وَاحِدٍ فَادْعُ لَنَا رَبَّكَ
يُخْرِجْ لَنَا مِمَّا تُنْبِتُ الْاَرْضُ مِنْ بَقْلِهَا وَقِثَّٓائِهَا وَفُومِهَا
وَعَدَسِهَا وَبَصَلِهَا قَالَ اَتَسْتَبْدِلُونَ الَّذٖي هُوَ اَدْنٰى بِالَّذٖي
هُوَ خَيْرٌ اِهْبِطُوا مِصْرًا فَاِنَّ لَكُمْ مَا سَاَلْتُمْ وَضُرِبَتْ
عَلَيْهِمُ الذِّلَّةُ وَالْمَسْكَنَةُ وَبَٓاؤُ۫ بِغَضَبٍ مِنَ اللّٰهِ ذٰلِكَ
بِاَنَّهُمْ كَانُوا يَكْفُرُونَ بِاٰيَاتِ اللّٰهِ وَيَقْتُلُونَ النَّبِيّٖنَ
بِغَيْرِ الْحَقِّ ذٰلِكَ بِمَا عَصَوْا وَكَانُوا يَعْتَدُونَ ﴿٦١﴾



**58**- (Gelî îsraîliyan!) Gava me ji we re got: Herin vî bajarê (Qudsê), tiştê ku hûn bivên û hûn çawa bixwazin bi noşîcanî bixwin, bi sernizmî di derî re bikevin hundir û bibêjin "(Xwedayê me), Li gunehên me bibûre! Em jî dê li gunehên we bibûrin û Em ê (xêrên) qencîkarên rast û durist zêde bikin.

**59**- Lê belê ew ên ku zalim bûn, wan gotina ku ji wan re hatibû gotin bi yeke din guherand. Me jî bi sedema neqenciya ku dikirin, li ser ên zalim ji asîmanan ezabek daxist.

**60**- Bîne bîra wan; wê dema Mûsa ji bo gelê xwe av xwest. Me jî jê re got: "Gopalê xwe li kevir bide!" (Piştî Mûsa gopalê xwe li kevir da) Di cih de ji wî kevirî dozdeh çaviyên avê derbûn. Her nifşî cihê avvexwarina (kaniya) xwe nas kir. (Me ji wan re got): "Ji rizqê ku Xwedê Teala (daye we) bixwin, vexwin û li erdê fesadiyê mekin."

**61**- Bêne bîra wan; wê dema we got: "Ey Mûsa! Qîma me bi xwarineke tenê nayê, ji Xwedayê xwe tiştên ku erd wan hêşîn dike bixwaze; ji şoqilên wê, xiyarên wê, sîrên wê, nîskên wê, pîvazên wê ji me re derîne." Mûsa ji wan re got: "Ma hûn tiştên giranbiha bi tiştên kêmbiha diguherînin?! Naxwe, dakevin herin bajêr. Muheqeq tiştên ku hûn dixwazin, ji we re lê hene." Mora belengazî û riswatiyê li wan hate xistin û rastî xezeba Xwedê Teala hatin. Ev (ya hatî serê wan) ji ber ku ayetên Xweda mandele kirin, bi stemkarî pêxember dikuştin, ji ber ku bêemriya Xwedê dikirin û ji hedê xwe derdiketin.

إِنَّ الَّذِينَ اٰمَنُوا وَالَّذِينَ هَادُوا وَالنَّصَارٰى وَالصَّابِئِينَ مَنْ
اٰمَنَ بِاللّٰهِ وَالْيَوْمِ الْاٰخِرِ وَعَمِلَ صَالِحًا فَلَهُمْ اَجْرُهُمْ عِنْدَ
رَبِّهِمْ وَلَا خَوْفٌ عَلَيْهِمْ وَلَا هُمْ يَحْزَنُونَ ﴿٦٢﴾ وَاِذْ اَخَذْنَا
مِيثَاقَكُمْ وَرَفَعْنَا فَوْقَكُمُ الطُّورَ خُذُوا مَا اٰتَيْنَاكُمْ بِقُوَّةٍ
وَاذْكُرُوا مَا فِيهِ لَعَلَّكُمْ تَتَّقُونَ ﴿٦٣﴾ ثُمَّ تَوَلَّيْتُمْ مِنْ بَعْدِ ذٰلِكَ
فَلَوْلَا فَضْلُ اللّٰهِ عَلَيْكُمْ وَرَحْمَتُهُ لَكُنْتُمْ مِنَ الْخَاسِرِينَ
﴿٦٤﴾ وَلَقَدْ عَلِمْتُمُ الَّذِينَ اعْتَدَوْا مِنْكُمْ فِي السَّبْتِ فَقُلْنَا
لَهُمْ كُونُوا قِرَدَةً خَاسِئِينَ ﴿٦٥﴾ فَجَعَلْنَاهَا نَكَالًا لِمَا بَيْنَ
يَدَيْهَا وَمَا خَلْفَهَا وَمَوْعِظَةً لِلْمُتَّقِينَ ﴿٦٦﴾ وَاِذْ قَالَ مُوسٰى
لِقَوْمِهِ اِنَّ اللّٰهَ يَأْمُرُكُمْ اَنْ تَذْبَحُوا بَقَرَةً قَالُوا اَتَتَّخِذُنَا
هُزُوًا قَالَ اَعُوذُ بِاللّٰهِ اَنْ اَكُونَ مِنَ الْجَاهِلِينَ ﴿٦٧﴾
قَالُوا ادْعُ لَنَا رَبَّكَ يُبَيِّنْ لَنَا مَا هِيَ قَالَ اِنَّهُ يَقُولُ اِنَّهَا
بَقَرَةٌ لَا فَارِضٌ وَلَا بِكْرٌ عَوَانٌ بَيْنَ ذٰلِكَ فَافْعَلُوا مَا
تُؤْمَرُونَ ﴿٦٨﴾ قَالُوا ادْعُ لَنَا رَبَّكَ يُبَيِّنْ لَنَا مَا لَوْنُهَا قَالَ اِنَّهُ
يَقُولُ اِنَّهَا بَقَرَةٌ صَفْرَاءُ فَاقِعٌ لَوْنُهَا تَسُرُّ النَّاظِرِينَ ﴿٦٩﴾

**62**- Bêguman ew ên ku (bi fitreta xwe) bawerî anîn û ew ên ku bûne cihû, yên ku bûne fileh û bûne sabiîn, vêca (piştî şandina Muhemmed bi pêxemberî) ji wan kî baweriyê bi Xwedê Teala û roja axretê bîne û karê qenc bike (bibe peyrewê Pêxember), ji bo wan li nik Xwedayê wan xelat heye û li ser wan tirs nîn e û ew xemgîn jî nabin.

**63**- Bi bîr bînin dema me sozeke saxlem ji we wergirt (ku hûn ê bi Tewratê emel bikin) û me (Çiyayê) Tûr di ser we re bilind kir. (Me ji we re got:) “Tewrata ku me daye we zexm pê bigirin, tiştên ku tê de ne bi bîra xwe bînin (û pê emel bikin) da ku hûn xwe (ji ezabê Xwedê Teala) biparêzin.”

**64**- Piştî vê, hûn li ser soza xwe nesekinîn. Eger kerem û merhemeta Xwedê Teala li ser we nebûya, teqez hûn dibûn ji ziyankeran.

**65**- Bi rastî hûn dizanin ka me çi aniye serê wan ên ku di roja şemiyê de (bi girtina masiyan) zêdegavî dikirin. Me ji wan re got: “Bibin meymûnên rezîl û riswa.”

**66**- Vêca me ev rûdan ji bo wan ên di wê demê de û ji bo wan ên ku dê piştî wan bên, kire îbret û me ji bo mutteqiyan jî xiste şîret.

**67**- Bêne bîra xwe; wê dema Mûsa ji gelê xwe re got: “Bêguman Xwedê Teala li we ferman dike ku hûn çêlekekê şerjê bikin.” Gotin: “Ma tu tinazan bi me dikî?” (Mûsa) got: “Ez xwe diavêjim ber penaha Xwedê Teala ku ez bibim ji yên nezanên tinazker.”

**68**- Gotin: “Li ber Xwedayê xwe bigere, bila ji me re salox bide ka ew çêlekeke çawa ye.” Got: “Xwedê Teala dibêje ku ew ne çêlekeke pîr e, ne jî ciwan e, di navbera van her duyan de ye.” Vêca tiştê ku li we hatiye fermankirin, pêk bînin.

**69**- Gotin: “Li ber Xwedayê xwe bigere, ka rengê wê çi ye bila eşkere bike?” Got: “Xwedê Teala dibêje ku çêlekeke rengzer e, zerekî safî ye, temaşevanê xwe dilxweş dike.”

قَالُوا ادْعُ لَنَا رَبَّكَ يُبَيِّنْ لَنَا مَا هِيَۙ اِنَّ الْبَقَرَ تَشَابَهَ عَلَيْنَاۜ
وَاِنَّٓا اِنْ شَٓاءَ اللّٰهُ لَمُهْتَدُونَ ﴿٧٠﴾ قَالَ اِنَّهُ يَقُولُ اِنَّهَا بَقَرَةٌ لَا
ذَلُولٌ تُث۪يرُ الْاَرْضَ وَلَا تَسْقِي الْحَرْثَۚ مُسَلَّمَةٌ لَا شِيَةَ ف۪يهَاۜ
قَالُوا الْـٰٔنَ جِئْتَ بِالْحَقِّۜ فَذَبَحُوهَا وَمَا كَادُوا يَفْعَلُونَ۟ ﴿٧١﴾
وَاِذْ قَتَلْتُمْ نَفْسًا فَادّٰرَءْتُمْ ف۪يهَاۜ وَاللّٰهُ مُخْرِجٌ مَا كُنْتُمْ
تَكْتُمُونَۚ ﴿٧٢﴾ فَقُلْنَا اضْرِبُوهُ بِبَعْضِهَاۜ كَذٰلِكَ يُحْيِ اللّٰهُ الْمَوْتٰى
وَيُر۪يكُمْ اٰيَاتِه۪ لَعَلَّكُمْ تَعْقِلُونَ ﴿٧٣﴾ ثُمَّ قَسَتْ قُلُوبُكُمْ مِنْ
بَعْدِ ذٰلِكَ فَهِيَ كَالْحِجَارَةِ اَوْ اَشَدُّ قَسْوَةًۜ وَاِنَّ مِنَ الْحِجَارَةِ
لَمَا يَتَفَجَّرُ مِنْهُ الْاَنْهَارُۜ وَاِنَّ مِنْهَا لَمَا يَشَّقَّقُ فَيَخْرُجُ مِنْهُ
الْمَٓاءُۜ وَاِنَّ مِنْهَا لَمَا يَهْبِطُ مِنْ خَشْيَةِ اللّٰهِۜ وَمَا اللّٰهُ بِغَافِلٍ
عَمَّا تَعْمَلُونَ ﴿٧٤﴾ اَفَتَطْمَعُونَ اَنْ يُؤْمِنُوا لَكُمْ وَقَدْ كَانَ فَر۪يقٌ
مِنْهُمْ يَسْمَعُونَ كَلَامَ اللّٰهِ ثُمَّ يُحَرِّفُونَهُ مِنْ بَعْدِ مَا عَقَلُوهُ
وَهُمْ يَعْلَمُونَ ﴿٧٥﴾ وَاِذَا لَقُوا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا قَالُٓوا اٰمَنَّاۚ وَاِذَا
خَلَا بَعْضُهُمْ اِلٰى بَعْضٍ قَالُٓوا اَتُحَدِّثُونَهُمْ بِمَا فَتَحَ اللّٰهُ
عَلَيْكُمْ لِيُحَٓاجُّوكُمْ بِه۪ عِنْدَ رَبِّكُمْۜ اَفَلَا تَعْقِلُونَ ﴿٧٦﴾

اَوَلَا

**70-** Gotin: "Ji Xwedayê xwe bixwaze, bila eşkere bike; ka ew çi çêlek e! Bi rastî ew ji me re tevlihev hat. Xweda hez bike muheqeq em ê bi ser riya rast ve bibin."

**71-** Mûsa got: "Xwedê Teala dibêje: Ew ne çêlekeke hînkirî ye ku cot bike û zeviyan av nade; bêkêmasî ye, tu rengekî din tê de tune ye." Vêca jê re gotin: "Ha niha te rast got (me rastiya te qebûl kir)." Êdî çêlek gurandin. Lê ji ber înadê hindik mabû ku şerjê nekin.

**72-** Di bîr bînin dema we mirovek kuşt û vêca der heqê wî de we xirecir dikir (we ew diavêt stûyê hev). Hal ev e ku Xwedê Teala tiştê ku hûn vedişêrin, dertîne holê.

**73-** Me ji wan re got: "Hin ji goştê çêlekê di kuştî bidin. Bi vî awayî Xwedê Teala miriyan sax dike û nîşanên (şiyana) xwe ji we re berçav dike, da ku hûn aqil bigirin.

**74-** Paşê (piştî van rûdanan) dîsa dilê we hişk bû. Êdî ew mîna kevir e, belkî jê jî hişktir e. Bêguman hin ji keviran hene ku ji wan rûbar derdikevin û bi rastî hin ji wan hene ku dibin du şeq, vêca av ji wan tê der û hinek ji wan hene ku ji tirsa Xwedê Teala ji hev parçe dibin, tên xwarê. Helbet Xwedê Teala ji tiştê ku hûn dikin, ne bêxeber e.

**75-** Ma hûn, hêvî dikin ku ew ê bi we baweriyê bînin? Bi rastî komek ji wan hebû ku li gotina Xwedê Teala guhdarî dikir û piştî ku rastiya wê hîn dibûn wan bi zanebûn ew diguherand.

Piştî wefata Mûsa hin haxaman (zanayan) ji bo berjewendiyên xwe Tewrat guherandin. Li gorî eqlê xwe rave kirin. Mixabin di van rojan de mîna wan haxamên cihûyan hin kes hene ku bi navê mislimantiyê jî tefsîrne dijî îslamê li Qur'anê didin û mala nezanan jî bi xwe re xerab dikin!

**76-** Dema cihû rastî bawermendan dihatin; digotin: "Me bawerî anî" û dema ew xwe bi xwe diman, digotin: "Ma tiştê ku Xwedê Teala (ji salixên Muhemmed ên di Tewratê de) hûn pê serwext kirin, hûn ê ji wan re bibêjin da ku wî tiştî li hemberî we, li cem Xwedayê we bikine delîl?" Ma hûn aqil nagirin?!

**77**- Qey ew nizanin ku bêguman Xwedê Teala, bi ya ku ew vedişêrin û bi ya ku eşkere jî dikin, dizane?

**78**- Hinek ji wan (cihûyan) ummî ne; ji xwendin û nivîsê fehm nakin, ji xweziyên pûç pê ve tiştekî nizanin, ji Tewratê tu tiştî fehm nakin û ew her li dûv gumanê ne.

**79**- Êdî weyl li wan kesan be ku Tewratê bi destên xwe dinivîsin, paşê da ku bi nirxekî erzan bifiroşin (fermandaran û maldaran bidine qayîlkirin û pertal û diravan ji wan bistînin) dibêjin: "Ev ji cem Xwedê nazil bûye!" Îcar wax li halê wan be, ji ber tiştê ku destên wan nivîsandiye! Wax li wan be ji ber tiştê ku pê qezenc kirine!

Haxamên cihûyan wesfên pêxemberê Xwedê yên ku di Tewratê de bûn, guherandin û bi awayekî xelet nivîsîn û gotin: "Ev ji Tewratê ye û ji cem Xwedê ye" vêca bi nirxekî erzan firotin.

**80**- (Cihûyan) Gotin: "Ji çend rojên bihejmar pê ve agir dest nade me. (Ya Muhemmed! Ji wan re)" Bibêje: "Ma qey we li ser vê yekê ji Xwedê Teala sozek wergirtiye, vêca teqez Xwedê Teala wê soza xwe neşikîne. Yan jî ma hûn di bara Xwedê Teala de tiştê ku nizanin, dibêjin?"

Zanayên cihûyan ji xelkê xwe re digotin: Îmanê bi Muhemmed neyînin. Lewra eger em îmanê pê neyînin jî, em ji heft rojan pê ve di êgir de namînin û bi vî awayî xwe dixapandin.

**81**- Nexêr; çi kesê ku gunehekî bike û gunehên wî dor lê bipêçe, ha ew kes xelkê dojehê ye û ew dê heta hetayê lê bimîne.

**82**- Herçî yên ku bawerî anîn û karên qenc kirin, ew ehlên bihiştê ne, ew heta hetayê li wir dimînin.



أَوَلَا يَعْلَمُونَ أَنَّ اللّٰهَ يَعْلَمُ مَا يُسِرُّونَ وَمَا يُعْلِنُونَ
﴿٧٧﴾ وَمِنْهُمْ أُمِّيُّونَ لَا يَعْلَمُونَ الْكِتَابَ إِلَّا أَمَانِيَّ وَإِنْ
هُمْ إِلَّا يَظُنُّونَ ﴿٧٨﴾ فَوَيْلٌ لِلَّذِينَ يَكْتُبُونَ الْكِتَابَ
بِأَيْدِيهِمْ ثُمَّ يَقُولُونَ هٰذَا مِنْ عِنْدِ اللّٰهِ لِيَشْتَرُوا بِهِ
ثَمَنًا قَلِيلًا فَوَيْلٌ لَهُمْ مِمَّا كَتَبَتْ أَيْدِيهِمْ وَوَيْلٌ لَهُمْ
مِمَّا يَكْسِبُونَ ﴿٧٩﴾ وَقَالُوا لَنْ تَمَسَّنَا النَّارُ إِلَّا أَيَّامًا
مَعْدُودَةً قُلْ أَتَّخَذْتُمْ عِنْدَ اللّٰهِ عَهْدًا فَلَنْ يُخْلِفَ اللّٰهُ
عَهْدَهُ أَمْ تَقُولُونَ عَلَى اللّٰهِ مَا لَا تَعْلَمُونَ ﴿٨٠﴾ بَلٰى
مَنْ كَسَبَ سَيِّئَةً وَأَحَاطَتْ بِهِ خَطِيئَتُهُ فَأُولٰئِكَ
أَصْحَابُ النَّارِ هُمْ فِيهَا خَالِدُونَ ﴿٨١﴾ وَالَّذِينَ آمَنُوا
وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ أُولٰئِكَ أَصْحَابُ الْجَنَّةِ هُمْ فِيهَا
خَالِدُونَ ﴿٨٢﴾ وَإِذْ أَخَذْنَا مِيثَاقَ بَنِي إِسْرَائِيلَ لَا تَعْبُدُونَ
إِلَّا اللّٰهَ وَبِالْوَالِدَيْنِ إِحْسَانًا وَذِي الْقُرْبٰى وَالْيَتَامٰى
وَالْمَسَاكِينِ وَقُولُوا لِلنَّاسِ حُسْنًا وَأَقِيمُوا الصَّلٰوةَ وَآتُوا
الزَّكٰوةَ ثُمَّ تَوَلَّيْتُمْ إِلَّا قَلِيلًا مِنْكُمْ وَأَنْتُمْ مُعْرِضُونَ ﴿٨٣﴾

**83**- (Gelî cihûyan!) Bînin bîra xwe, dema me soz ji zaroyên Îsraîl wergirt ku "Hûn ê ji Xwedê Teala pê ve ji tu kesî re îbadetê nekin û hûn ê her li dê û bavên xwe, xizmên xwe, sêwî û belengazên xwe qenciyê bikin û ji mirovan re qenciyê bibêjin, bi awayê pêdivî nimêj bikin û zekatê bidin." Paşê, ji bilî çend kesan we berê xwe ji peymanê vegerand û jixwe halê we her tim bêsozî ye.

Di wê dema ku Pêxmberê me (s) hatî şandin de li Erebistanê, nexasim li dorhêla Medînê gelek cihû hebûn. Wan ji ereban re digot; di nêzîk de pêxemberek dê were şandin. Lê wan hêvî hebû ku dê ji cihûyan bê şandin. Vêca dema dîtin ku ji ereban hate şandin ji çavnebarî îman pê neanîn. Ji ber vê yekê, Qur'an di vê dabaşê de bi bîr tîne ku wan pir ayetên Tewratê guherandin û soza ku bi Xwedê re dabûn, neanîne cih.

وَاِذْ اَخَذْنَا مِيثَاقَكُمْ لَا تَسْفِكُونَ دِمَٓاءَكُمْ وَلَا تُخْرِجُونَ
اَنْفُسَكُمْ مِنْ دِيَارِكُمْ ثُمَّ اَقْرَرْتُمْ وَاَنْتُمْ تَشْهَدُونَ ﴿٨٤﴾ ثُمَّ
اَنْتُمْ هٰٓؤُلَٓاءِ تَقْتُلُونَ اَنْفُسَكُمْ وَتُخْرِجُونَ فَرِيقًا مِنْكُمْ مِنْ
دِيَارِهِمْ تَظَاهَرُونَ عَلَيْهِمْ بِالْاِثْمِ وَالْعُدْوَانِ وَاِنْ يَأْتُوكُمْ
اُسَارٰى تُفَادُوهُمْ وَهُوَ مُحَرَّمٌ عَلَيْكُمْ اِخْرَاجُهُمْ اَفَتُؤْمِنُونَ
بِبَعْضِ الْكِتَابِ وَتَكْفُرُونَ بِبَعْضٍ فَمَا جَزَٓاءُ مَنْ يَفْعَلُ
ذٰلِكَ مِنْكُمْ اِلَّا خِزْيٌ فِي الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا وَيَوْمَ الْقِيٰمَةِ
يُرَدُّونَ اِلٰٓى اَشَدِّ الْعَذَابِ وَمَا اللّٰهُ بِغَافِلٍ عَمَّا تَعْمَلُونَ
﴿٨٥﴾ اُولٰٓئِكَ الَّذِينَ اشْتَرَوُا الْحَيٰوةَ الدُّنْيَا بِالْاٰخِرَةِ فَلَا
يُخَفَّفُ عَنْهُمُ الْعَذَابُ وَلَا هُمْ يُنْصَرُونَ ﴿٨٦﴾ وَلَقَدْ
اٰتَيْنَا مُوسَى الْكِتَابَ وَقَفَّيْنَا مِنْ بَعْدِهٖ بِالرُّسُلِ وَاٰتَيْنَا
عِيسَى ابْنَ مَرْيَمَ الْبَيِّنَاتِ وَاَيَّدْنَاهُ بِرُوحِ الْقُدُسِ اَفَكُلَّمَا
جَٓاءَكُمْ رَسُولٌ بِمَا لَا تَهْوٰٓى اَنْفُسُكُمُ اسْتَكْبَرْتُمْ
فَفَرِيقًا كَذَّبْتُمْ وَفَرِيقًا تَقْتُلُونَ ﴿٨٧﴾ وَقَالُوا قُلُوبُنَا
غُلْفٌ بَلْ لَعَنَهُمُ اللّٰهُ بِكُفْرِهِمْ فَقَلِيلًا مَا يُؤْمِنُونَ ﴿٨٨﴾

وَلَمَّا

**84**- (Gelî zaroyên Îsraîl!) Bi bîr bînin dema we bi me re soz dabû (û me ji we re got:) “Xwîna hev nerêjin û hev ji cih û warên hev dernexin”, paşê we ev qebûl kir û hûn bi xwe jî şahid in.

ʿEhd navlêkeke Qur’anê ye, bêhna mêrxasî, camêrî û durustiyê jê difûre. ʿEhd, her wekî jê tê fehmkirin jî, ew soz e ku mirov li serê bimîne û li pey here. ʿEhd û peyman du beş in: yekem, di navbera Xwedê û bendeyên wî de ye ku ew ji ev e: Divê mirov ji dil û can, bi dilekî safî û paqij ji Xwedê re îbadet bike û qet tiştekê jê re neke heval û şirîk. Duyem, ew peymane di navbera mirovan de ye, ya ku mirov di danûstandin, di kar û barên jiyanê de mirov bi hev re soz didin da ku bi cih bînin. Ew her du beşên peymanê jî dikevin binê pênasiya emanetê ku pêkneanîna wê ji nîşanên munafiqtiyê ye, her wekî di fermodeya pêxember de hatiye ragihandin.

**85**- Paşê hûn; ev ên han (we soza xwe nebire serî) hûn hev dikujin û hin ji we yên din ji mal û warên wan dertînin. Bi gunehkarî û neheqî hûn li hember wan piştgiriya hev dikin. Eger bi esîrî bi bal we ve hatin, hûn (ji bo rizgarkirina wan) di ber wan de gerewê (fîdyê) didin, digel ku deranîna wan ji mal û warên wan li we heram bû jî. Erê ma vêca hûn îmanê bi hinekî ji Tewratê tînin û hinekî jî mandele dikin. Êdî ji we cezayê kesên ku wisa bikin, di jiyana vê cîhanê de her riswatî ye û roja qiyametê jî dê bi bal ezabê herî dijwar ve bên vegerandin. Xwedê Teala ji tiştên ku hûn dikin hîç ne bêagah e.

**86**- Ha ew ên hatin salixdan, ew ên ku li şûna axretê jiyana dinyayê kirîne. Êdî li ser wan ezab nayê sivikkirin û (ji bo filitîna ji ezab) arîkariya wan jî nayê kirin.

**87**- Sond be; me kitêb (Tewrat) daye Mûsa! Me piştî wî pêxember li dû hev şandin. Me mûcîze dan Îsayê kurê Meryemê û me bi riya Canê Pak (Cebraîl) jî piştgiriya wî kir. Erê ma ev çi hal e; çi dema pêxemberek ji we re bê ku ne li gorî dilê we be, hûn li hemberî wî quretiyê dikin; vêca hûn hinekan ji wan înkar dikin û hinekan jî dikujin.

**88**- (Cihûyan ji tinazan ve) Gotin: “Dilê me perdekirî ye.” Na! Belkî ji ber kufra wan Xwedê Teala lanet li wan barandiye û kêm ji wan baweriyê tînin.

Ev ayetên ku ji vir û pê de bên helwesta cihûyan a piştî daketina Qur’anê rave dike. Ya ku wan li hemberî Tewratê kiriye, xwestin ku wê li hemberî Qur’anê jî bikin.

وَلَمَّا جَٓاءَهُمْ كِتَابٌ مِنْ عِنْدِ اللّٰهِ مُصَدِّقٌ لِمَا مَعَهُمْۙ
وَكَانُوا مِنْ قَبْلُ يَسْتَفْتِحُونَ عَلَى الَّذِينَ كَفَرُواۚ فَلَمَّا
جَٓاءَهُمْ مَا عَرَفُوا كَفَرُوا بِهٖۘ فَلَعْنَةُ اللّٰهِ عَلَى الْكَافِرِينَ
﴿٨٩﴾ بِئْسَمَا اشْتَرَوْا بِهٖٓ اَنْفُسَهُمْ اَنْ يَكْفُرُوا بِمَٓا اَنْزَلَ
اللّٰهُ بَغْيًا اَنْ يُنَزِّلَ اللّٰهُ مِنْ فَضْلِهٖ عَلٰى مَنْ يَشَٓاءُ مِنْ
عِبَادِهٖۚ فَبَٓاؤُ بِغَضَبٍ عَلٰى غَضَبٍۜ وَلِلْكَافِرِينَ عَذَابٌ
مُهِينٌ ﴿٩٠﴾ وَاِذَا قِيلَ لَهُمْ اٰمِنُوا بِمَٓا اَنْزَلَ اللّٰهُ قَالُوا نُؤْمِنُ
بِمَٓا اُنْزِلَ عَلَيْنَا وَيَكْفُرُونَ بِمَا وَرَٓاءَهُۗ وَهُوَ الْحَقُّ
مُصَدِّقًا لِمَا مَعَهُمْۜ قُلْ فَلِمَ تَقْتُلُونَ اَنْبِيَٓاءَ اللّٰهِ مِنْ
قَبْلُ اِنْ كُنْتُمْ مُؤْمِنِينَ ﴿٩١﴾ وَلَقَدْ جَٓاءَكُمْ مُوسٰى
بِالْبَيِّنَاتِ ثُمَّ اتَّخَذْتُمُ الْعِجْلَ مِنْ بَعْدِهٖ وَاَنْتُمْ ظَالِمُونَ
﴿٩٢﴾ وَاِذْ اَخَذْنَا مِيثَاقَكُمْ وَرَفَعْنَا فَوْقَكُمُ الطُّورَۜ خُذُوا
مَٓا اٰتَيْنَاكُمْ بِقُوَّةٍ وَاسْمَعُواۜ قَالُوا سَمِعْنَا وَعَصَيْنَا
وَاُشْرِبُوا فٖى قُلُوبِهِمُ الْعِجْلَ بِكُفْرِهِمْۜ قُلْ بِئْسَمَا
يَاْمُرُكُمْ بِهٖٓ اِيمَانُكُمْ اِنْ كُنْتُمْ مُؤْمِنِينَ ﴿٩٣﴾

**89**- Çi dema ji cem Xwedê Teala ew Qur'ana ku Tewrata di destê wan de jî rast didêra bi bal wan ve hat û berê jî wan li hemberî kafiran bi Qur'anê arîkarî dixwest (da ku bi ser bikevin), vêca çi dema ew heqîqeta ku wan pê dizanî ji wan re hat, ew mandele kirin. Êdî laneta Xwedê Teala li wan kafiran be!

**90**- Ew çi tiştekî pîs e ya ku xwe pê firotine; ku ji çavnebarî ew wehya ku Xwedê ji kerema xwe, ji bendeyên xwe yên ku divê re hinartî, înkar dikin. Vêca wan xezeb li ser xezebê heq kir û teqez ji kafiran re ezabekî riswaker heye.

**91**- Dema ji cihûyan re tê gotin: "Bi Qur'ana ku Xwedê Teala nazil kiriye, baweriyê bînin", dibêjin: "Em bi Tewrata ku ji me re hatiye şandin baweriyê tînin." Ew ji bilî Tewratê (çi berî wê û çi piştî wê bê) mandele dikin. Hal ev e ku Qur'an heq e û Tewrata ku bi wan re ye jî rast didêre. (Ya Muhemmed!) Bibêje: Eger hûn bera (bi Tewratê) bawermend bûn, naxwe çima we berî niha pêxemberên Xwedê dikuştin?!

**92**- (Gelî cihûyan!) Sond be, Mûsa bi mucîzeyên eşkere ji we re hat. Piştî hingê (ku ew çûbû civîna xwe ya Tûrê) we golik (a ji zêr) ji xwe re kire îlah û bi vî awayî we neheqî li xwe kir.

**93**- (Gelî zaroyên Îsraîl!) Bînin bîra xwe, wexta me soz ji we wergirt û me Çiyayê Tûr di ser we re rakir ji bo ku tiştê me daye we bi xurtî bigirin û guh bidinê. (Wan jî li hemberî vê qewîtiyê) Gotin: "Em seh dikin û em bêemriyê dikin." Bi sedem kufra wan, perestina golikê di dilê wan geriyabû. (Ji wan re) Bibêje: "Eger birastî hûn bawermend in vêca eva ku baweriya we li we ferman dike çiqas xerab e!"

قُلْ اِنْ كَانَتْ لَكُمُ الدَّارُ الْاٰخِرَةُ عِنْدَ اللّٰهِ خَالِصَةً مِنْ
دُونِ النَّاسِ فَتَمَنَّوُا الْمَوْتَ اِنْ كُنْتُمْ صَادِقِينَ ﴿٩٤﴾ وَلَنْ
يَتَمَنَّوْهُ اَبَدًا بِمَا قَدَّمَتْ اَيْدِيهِمْ وَاللّٰهُ عَلِيمٌ بِالظَّالِمِينَ ﴿٩٥﴾
وَلَتَجِدَنَّهُمْ اَحْرَصَ النَّاسِ عَلٰى حَيٰوةٍ وَمِنَ الَّذِينَ اَشْرَكُوا
يَوَدُّ اَحَدُهُمْ لَوْ يُعَمَّرُ اَلْفَ سَنَةٍ وَمَا هُوَ بِمُزَحْزِحِهِ مِنَ
الْعَذَابِ اَنْ يُعَمَّرَ وَاللّٰهُ بَصِيرٌ بِمَا يَعْمَلُونَ ﴿٩٦﴾ قُلْ مَنْ
كَانَ عَدُوًّا لِجِبْرِيلَ فَاِنَّهُ نَزَّلَهُ عَلٰى قَلْبِكَ بِاِذْنِ اللّٰهِ
مُصَدِّقًا لِمَا بَيْنَ يَدَيْهِ وَهُدًى وَبُشْرٰى لِلْمُؤْمِنِينَ
﴿٩٧﴾ مَنْ كَانَ عَدُوًّا لِلّٰهِ وَمَلٰٓئِكَتِهِ وَرُسُلِهِ وَجِبْرِيلَ
وَمِيكَالَ فَاِنَّ اللّٰهَ عَدُوٌّ لِلْكَافِرِينَ ﴿٩٨﴾ وَلَقَدْ اَنْزَلْنَٓا
اِلَيْكَ اٰيَاتٍ بَيِّنَاتٍ وَمَا يَكْفُرُ بِهَٓا اِلَّا الْفَاسِقُونَ ﴿٩٩﴾
اَوَكُلَّمَا عَاهَدُوا عَهْدًا نَبَذَهُ فَرِيقٌ مِنْهُمْ بَلْ اَكْثَرُهُمْ
لَا يُؤْمِنُونَ ﴿١٠٠﴾ وَلَمَّا جَٓاءَهُمْ رَسُولٌ مِنْ عِنْدِ اللّٰهِ
مُصَدِّقٌ لِمَا مَعَهُمْ نَبَذَ فَرِيقٌ مِنَ الَّذِينَ اُوتُوا الْكِتَابَ
كِتَابَ اللّٰهِ وَرَٓاءَ ظُهُورِهِمْ كَاَنَّهُمْ لَا يَعْلَمُونَ ﴿١٠١﴾

وَاتَّبَعُوا

**94**- (Ji wan re) Bibêje: "Eger axret (bihişt) li cem Xwedê Teala ji bo we tenê be; ne ji bo mirovên din be, naxwe eger bera hûn rast dibêjin, de mirinê bixwazin."

**95**- Ew ji ber gunehên ku berê bi destên xwe kirin dê hîç mirinê nexwazin. Xwedê Teala bi zaliman dizane.

**96**- Sond be; tu (hey Muhemmed) dê bizanî ku cihû ji her kesî bêhtir li ser jiyana vê dinyayê bi rijd in û ji wan ên ku (ji Xwedê re) şerîkan çêdikin jî. Her yek ji wan dixwaze ku hezar salî bijî, lê belê jîna (hezar salî) tu kesî ji ezabê Xwedê Teala dûr nake. Xwedê Teala, bîner e bi karên ku ew dikin.

**97**- (Ya Muhemmed!) Bibêje: "Kî, dijminê Cebraîl be bila baş bizanibe ku misoger Cebraîl bi destûra Xwedê Teala Qur'an nazil kiriye ser dilê te, ku ew kitêbên beriya xwe rast didêre û ji bo bawermendan rêber û mizgîn e.

**98**- Kî dijminê Xwedê Teala, firîşte û pêxemberên Wî û dijminê Cebraîl û Mîkaîl be, bêguman Xwedê Teala jî dijminê kafiran e.

**99**- Bi rastî me ayetên eşkereker (ku heq û batil ji hev vediqetîne) ji bo te hinartin û ji yên fasiq pê ve tu kes wan înkar nake.

**100**- (Ma ew çende bêbext in?) Çendî ku bi misogerî soz didin, hinek ji wan wê sozê di ser guhê xwe re diavêjin, belkî pirên wan baweriyê nayînin.

**101**- Çi dema ji cem Xwedê Teala pêxemberek ji wan re dihat ku kitêba li ber destê wan jî rast didêre; komek ji yên xwedankitêb, her wekî ku nizanibin, wan kitêba Xwedê Teala (Tewrat) diavêt pişt guhê xwe û dev jê berdida.

Bi qasî ku ji van ayetên pîroz tê zanîn, cihû di nava xwe de çar beş in.

- **Yekem:** Ewên ku baweriyê bi Tewratê tînin û hukmên wê tetbîq dikin. Ew pir hindik in.
- **Duyem:** Ewên kı li ser ehd û soza xwe nemane û neqencî kirine, mebesta ayetê jî ew in.
- **Sêyem:** Ewên ku nezan in û nizanin ka çi dikin.
- **Çarem:** Ewên ku zendîq in, wekî ku bi Tewratê emel dikin xwe nîşan didin, lê bi eksa wê dikin. Yanî, dilê wan û devê wan yek tiştî nabêje.

**102**- Wan (cihûyan) der barê hukimdariya Suleyman de daye dûv tiştê ku şeytanan (di heyama Suleyman Pêxember de) digot. Hal ev e ku Suleyman Pêxember kafir nebûbû sêrbazî nekiribû û bawerî pê neanîbû), lê belê şeytan kafir bûbûn ku xelk fêrî sêrbaziyê û ya ku li Babîlê ji Harût û Marûtî re daketibû, fêrî mirovan dikirin. Hal ev e ku her duyan (Harût û Marût), kes fêrî sêrbaziyê nedikirin heyanî negotina: “Em bi xwe îmtîhan û ceribandin in, êdî fêrî sêrê nebin da hûn kafir nebin,” vêca ji her duyan tiştê ku pê jin û mêr ji hev diqetandin fêr dibûn. Ew sêrbaz eger ku ne bi destûra Xwedê Teala (û teqdîra wî) be nikarin bi tu awayî zerarê bidin xelkê. Ew a ku ziyanê dide wan û bi kêrî wan nayê, fêr dibûn. Bi rastî wan (cihûyan) zanîbû ku kesê (bi ayetên Xweda) sêrbazî kir di axretê de jê re tu par nîn e. Eger ew bizanibin; tiştê ku xwe pê firotine çiqas pîs e.

**103**- Eger wan (cihûyan) îman (bi Qur’anê) bianiya û wan hay ji (fermanên) Xwedê Teala hebûya (ew ê bihatina xelatkirin). Eger bizanibin, bêguman xelata ku ji cem Xwedê ye (ji bo wan) çêtir e (ji ya ku xwe pê firotine).

**104**- Gelî yên ku bawerî anîn! (Dema hûn bi pêxember re axivîn û we xwest jê re bibêjin: Muhletê bide me) mebêjin: “**Ra‘îna**” (ji ber ku cihû vê kelîmê kirêt bi mane dikin)! (Naxwe) bibêjin: “**Unzurna**” (lewra cihû nikarin maneyeke xerab bidine vê peyvê).

الْجُزْءُ الْاَوَّلُ ١٧

وَاتَّبَعُوا مَا تَتْلُوا الشَّيَاطِينُ عَلٰى مُلْكِ سُلَيْمٰنَ وَمَا
كَفَرَ سُلَيْمٰنُ وَلٰكِنَّ الشَّيَاطِينَ كَفَرُوا يُعَلِّمُونَ النَّاسَ
السِّحْرَ وَمَٓا اُنْزِلَ عَلَى الْمَلَكَيْنِ بِبَابِلَ هَارُوتَ
وَمَارُوتَ وَمَا يُعَلِّمَانِ مِنْ اَحَدٍ حَتّٰى يَقُولَٓا اِنَّمَا
نَحْنُ فِتْنَةٌ فَلَا تَكْفُرْ فَيَتَعَلَّمُونَ مِنْهُمَا مَا يُفَرِّقُونَ بِه۪
بَيْنَ الْمَرْءِ وَزَوْجِه۪ وَمَا هُمْ بِضَٓارّ۪ينَ بِه۪ مِنْ اَحَدٍ
اِلَّا بِاِذْنِ اللّٰهِ وَيَتَعَلَّمُونَ مَا يَضُرُّهُمْ وَلَا يَنْفَعُهُمْ
وَلَقَدْ عَلِمُوا لَمَنِ اشْتَرٰيهُ مَا لَهُ ف۪ي الْاٰخِرَةِ مِنْ خَلَاقٍ
وَلَبِئْسَ مَا شَرَوْا بِه۪ٓ اَنْفُسَهُمْ لَوْ كَانُوا يَعْلَمُونَ ١٠٢
وَلَوْ اَنَّهُمْ اٰمَنُوا وَاتَّقَوْا لَمَثُوبَةٌ مِنْ عِنْدِ اللّٰهِ خَيْرٌ لَوْ
كَانُوا يَعْلَمُونَ ١٠٣ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا لَا تَقُولُوا رَاعِنَا
وَقُولُوا انْظُرْنَا وَاسْمَعُوا وَلِلْكَافِر۪ينَ عَذَابٌ اَل۪يمٌ ١٠٤
مَا يَوَدُّ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا مِنْ اَهْلِ الْكِتَابِ وَلَا الْمُشْرِك۪ينَ
اَنْ يُنَزَّلَ عَلَيْكُمْ مِنْ خَيْرٍ مِنْ رَبِّكُمْ وَاللّٰهُ يَخْتَصُّ
بِرَحْمَتِه۪ مَنْ يَشَٓاءُ وَاللّٰهُ ذُو الْفَضْلِ الْعَظ۪يمِ ١٠٥

Bi gotina Xwedê bikin, (eger ku hûn nekin) teqez ji bo kafiran ezabekî dijwar heye.

Gava ku Pêxember (s) we’zek li sehabiyên xwe dikir ji wan re digotin: “Raîna” yanî bi lez nebore, xwe li me bigire. Lê belê ev kelîmeya “Raîna” di zimanê cihûyan de bi maneya dijûn bi kar dihat. Gava ku cihûyan gotina mislimanan bihîstin wan jî bi “Raîna” ya ku bi maneya ku dijûn bû, bi Pêxemberê me (s) re dipeyivîn. Ji ber vê yekê Xwedê ew bêje, li bawermandan qedexe kir û ji wan re got: “Di şûna **Raîna** de hûn **Ûnzûrna** ya ku bi maneya lez meke, li hêviya me bisekine’ ye, bi kar bînin.” Bi vê yekê cihû jî dê nikaribin çêrî Pêxemberê Xwedê (s) bikin.

**105**- Ne ew kafirên xwedankitêb û ne jî yên muşrik, ew naxwazin ku hîç qenciyek ji cem Xwedayê we, bi ser we de bê. Xwedê Teala kê bivê ji dilovaniya xwe re terxan dike. Bi rastî Xwedê Teala xwediyê qenciya mezin e.

مَا نَنْسَخْ مِنْ اٰيَةٍ اَوْ نُنْسِهَا نَاْتِ بِخَيْرٍ مِنْهَٓا اَوْ مِثْلِهَاۜ اَلَمْ
تَعْلَمْ اَنَّ اللّٰهَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَد۪يرٌ ﴿١٠٦﴾ اَلَمْ تَعْلَمْ اَنَّ
اللّٰهَ لَهُ مُلْكُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ وَمَا لَكُمْ مِنْ دُونِ اللّٰهِ
مِنْ وَلِيٍّ وَلَا نَص۪يرٍ ﴿١٠٧﴾ اَمْ تُر۪يدُونَ اَنْ تَسْـَٔلُوا رَسُولَكُمْ
كَمَا سُئِلَ مُوسٰى مِنْ قَبْلُۜ وَمَنْ يَتَبَدَّلِ الْكُفْرَ بِالْا۪يمَانِ
فَقَدْ ضَلَّ سَوَٓاءَ السَّب۪يلِ ﴿١٠٨﴾ وَدَّ كَث۪يرٌ مِنْ اَهْلِ الْكِتَابِ
لَوْ يَرُدُّونَكُمْ مِنْ بَعْدِ ا۪يمَانِكُمْ كُفَّارًاۚ حَسَدًا مِنْ عِنْدِ
اَنْفُسِهِمْ مِنْ بَعْدِ مَا تَبَيَّنَ لَهُمُ الْحَقُّۚ فَاعْفُوا وَاصْفَحُوا
حَتّٰى يَاْتِيَ اللّٰهُ بِاَمْرِه۪ۜ اِنَّ اللّٰهَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَد۪يرٌ ﴿١٠٩﴾
وَاَق۪يمُوا الصَّلٰوةَ وَاٰتُوا الزَّكٰوةَۜ وَمَا تُقَدِّمُوا لِاَنْفُسِكُمْ
مِنْ خَيْرٍ تَجِدُوهُ عِنْدَ اللّٰهِۜ اِنَّ اللّٰهَ بِمَا تَعْمَلُونَ بَص۪يرٌ ﴿١١٠﴾
وَقَالُوا لَنْ يَدْخُلَ الْجَنَّةَ اِلَّا مَنْ كَانَ هُودًا اَوْ نَصَارٰىۜ
تِلْكَ اَمَانِيُّهُمْۜ قُلْ هَاتُوا بُرْهَانَكُمْ اِنْ كُنْتُمْ صَادِق۪ينَ
﴿١١١﴾ بَلٰى مَنْ اَسْلَمَ وَجْهَهُ لِلّٰهِ وَهُوَ مُحْسِنٌ فَلَهُٓ اَجْرُهُ
عِنْدَ رَبِّه۪ۖ وَلَا خَوْفٌ عَلَيْهِمْ وَلَا هُمْ يَحْزَنُونَ ﴿١١٢﴾

وَقَالَتِ

**106**- Her çi ayetek heyanî ku em ji wê çêtir, yan jî mîna wê neyînin, em hukmê wê ayetê ji rewacê ranakin û em wê bi te nadine jibîrkirin. Ma tu nizanî ku bi rastî Xwedê li ser her tiştî qadir e.

Di îstîlaha usûla tefsîrê de ji vê re **"Nesix"** tê gotin. Îslamê, çawa hukmê wan dînên berê ji rewacê rakiriye, eynî wisa hin ayet jî hukmê hinan radikin.

**107**- Ma tu nizanî ku (hukm û îdareya) erd û asîmanan her ji Xweda re ye. Ji Xwedê Teala pê ve ji bo we ne dost û piştevan ne jî arîkarek heye.

**108**- Yan jî, ka çawa beriya we pirs ji Mûsa dihate kirin, ma hûn jî dixwazin ji pêxemberê xwe pirsan bikin? Kî îmanê bide bi kufrê, bi rastî wî rêka rast winda kiriye.

**109**- Gelek ji yên xwedîkitêb (cihû û fileh) piştî ku heq ji wan re bi temamî eşkere dibe jî, ji çavnebariya xwe dixwazin we ji baweriya we vegerînin û we bibin ser kufrê. Vêca di wan derbas bibin û çavê xwe ji wan bigirin, heyanî ku Xwedê Teala fermana xwe (li hemberî wan bi cîhadê) bişîne. Bêguman Xwedê Teala li ser her tiştî qadir e.

**110**- Bi rengê pêdivî nimêj bikin, zekatê bidin û hûn çi xêrê ji bo xwe li pêşiya xwe bişînin (axretê), teqez hûn ê bêkêmasî wê li nik Xwedê bibînin. Bêguman Xwedê bi karên ku hûn dikin bîner e.

**111**- (Yên xwedankitêb) Gotin: "Ji bilî kesên ku cihû yan jî fileh bin tu kes dê neçe bihiştê. Ev gotina hanê xweziyên wan e. (Ya Muhemmed! ji wan re) Bibêje: "De ka delîla xwe bînin eger bi rastî hûn rast dibêjin."

**112**- Nexêr, ya ew dibêjin ne wisan e! Kî berê xwe bide Xweda (jê re berdest bibe) û ew qencîkar be, vêca muheqeq xêra wî li cem Xwedayê wî ye. Ne tirs li ser wan heye ne jî ew xemgîn dibin.

Bes mirovên ku baweriyê bi Xwedayê xwe bînin, misliman bibin û qencîkariyê bikin û bidin pey şopa Muhemmed ew ji ezabê dojehê xilas dibin. Muhsin (qencikar), ê ku di ayetê de derbas bû û me bi qencîkarî îfade kir, ew kes e ku tenê ji bo Xwedê Teala îbadetê yan jî karekî bike. Ji Xwedê tenê bitirse û bes ji bo wî karê xwe bi duristî û bêkêmasî bike.

وَقَالَتِ الْيَهُودُ لَيْسَتِ النَّصَارٰى عَلٰى شَيْءٍ وَقَالَتِ النَّصَارٰى
لَيْسَتِ الْيَهُودُ عَلٰى شَيْءٍ وَهُمْ يَتْلُونَ الْكِتَابَ كَذٰلِكَ قَالَ
الَّذِينَ لَا يَعْلَمُونَ مِثْلَ قَوْلِهِمْ فَاللّٰهُ يَحْكُمُ بَيْنَهُمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ
فِيمَا كَانُوا فِيهِ يَخْتَلِفُونَ ١١٣ وَمَنْ اَظْلَمُ مِمَّنْ مَنَعَ مَسَاجِدَ
اللّٰهِ اَنْ يُذْكَرَ فِيهَا اسْمُهُ وَسَعٰى فِي خَرَابِهَا اُولٰئِكَ مَا كَانَ
لَهُمْ اَنْ يَدْخُلُوهَا اِلَّا خَائِفِينَ لَهُمْ فِي الدُّنْيَا خِزْيٌ وَلَهُمْ
فِي الْاٰخِرَةِ عَذَابٌ عَظِيمٌ ١١٤ وَلِلّٰهِ الْمَشْرِقُ وَالْمَغْرِبُ
فَاَيْنَمَا تُوَلُّوا فَثَمَّ وَجْهُ اللّٰهِ اِنَّ اللّٰهَ وَاسِعٌ عَلِيمٌ ١١٥ وَقَالُوا
اتَّخَذَ اللّٰهُ وَلَدًا سُبْحَانَهُ بَلْ لَهُ مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ
كُلٌّ لَهُ قَانِتُونَ ١١٦ بَدِيعُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَاِذَا قَضٰى
اَمْرًا فَاِنَّمَا يَقُولُ لَهُ كُنْ فَيَكُونُ ١١٧ وَقَالَ الَّذِينَ لَا
يَعْلَمُونَ لَوْلَا يُكَلِّمُنَا اللّٰهُ اَوْ تَاْتِينَا اٰيَةٌ كَذٰلِكَ قَالَ
الَّذِينَ مِنْ قَبْلِهِمْ مِثْلَ قَوْلِهِمْ تَشَابَهَتْ قُلُوبُهُمْ قَدْ
بَيَّنَّا الْاٰيَاتِ لِقَوْمٍ يُوقِنُونَ ١١٨ اِنَّا اَرْسَلْنَاكَ بِالْحَقِّ
بَشِيرًا وَنَذِيرًا وَلَا تُسْـَٔلُ عَنْ اَصْحَابِ الْجَحِيمِ ١١٩

**113**- Cihûyan got: "Fileh ne li ser tu dînî ne (û Îsa înkar kirin)." Filehan jî got: "Cihû ne li ser tu dînî ne (û Mûsa înkar kirin)." Hal ev e ku her duyan jî kitêb (Tewrat û Incîl) dixwendin. Her wiha ew ên ku zanîna wan (bi kitêban) nebû jî mîna gotina wan, digotin; (ên xwedandîn nẹ li ser tiştekî havildar in. Êdî Xwedê der heqê tiştê ku li serê li hev nedikirin de, ew ê roja qiyametê di navbera wan de ferman bike (dê wan ji hev safî bike).

**114**- Ma ji wî kesê ku nahêle di mizgeftên Xweda de navê Wî bête hildan û ew ê ku ji bo wêrankirina mizgeftan dixebite zalimtir kî heye? Ev ên hanê, heqê wan ew e ku bêtirs nikaribin bikevine mizgeftan! Ji bo wan li dinyayê riswayî û li axretê jî ezabekî mezin heye.

**115**- Rojhilat û Rojava milkê Xwedê Teala ne. Vêca çi cihê hûn berê xwe bidinê, Xwedê Teala li wê ye. Bêguman Xwedê qencîfireh e, zana ye.

**116**- (Cihû, fileh û muşrikan) gotin: "Xwedê Teala ji xwe re zaro girtine." Haşa! Xweda ji wan tiştan pak û munezzeh e. Belkî çi tiştên li erd û asîmanan hene her yên Wî ne, hemû jê re li ber fermanê amade ne.

**117**- Ew e afirînerê erd û asîmanan. Dema ku Ew bivê tiştekî biafirîne, tenê jê re dibêje: "Çêbibe!" Vêca di heman demê de ew jî çêdibe.

**118**- Ew ên ku zanîna wan (bi kitêban) nebû digot: "Ma çima Xwedê Teala bi me re napeyive, yan jî mûcîzeyekê (li ser pêxemberiya te) ji me re nayîne." Her wiha yên beriya wan jî mîna peyva wan digot. Dilê wan mîna hev in. Bêguman me ji bo civateke ku bawer dike, ayetên xwe eşkere kirine.

**119**- (Ya Muhemmed!) Bêguman me tu bi dînê heq (bi delîl û mûcîze) şand ku tu mizgînber û hişyarker î. Tu (piştî pêkanîna erka xwe) dê ji rewşa dojehiyan ne berpirsiyar bî.

وَلَنْ تَرْضٰى عَنْكَ الْيَهُودُ وَلَا النَّصَارٰى حَتّٰى تَتَّبِعَ مِلَّتَهُمْ قُلْ اِنَّ
هُدَى اللّٰهِ هُوَ الْهُدٰى وَلَئِنِ اتَّبَعْتَ اَهْوَٓاءَهُمْ بَعْدَ الَّذ۪ي جَٓاءَكَ
مِنَ الْعِلْمِ مَا لَكَ مِنَ اللّٰهِ مِنْ وَلِيٍّ وَلَا نَص۪يرٍ ﴿١٢٠﴾ اَلَّذ۪ينَ اٰتَيْنَاهُمُ
الْكِتَابَ يَتْلُونَهُ حَقَّ تِلَاوَتِه۪ اُو۬لٰٓئِكَ يُؤْمِنُونَ بِه۪ وَمَنْ يَكْفُرْ بِه۪
فَاُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الْخَاسِرُونَ ﴿١٢١﴾ يَا بَن۪ٓي اِسْرَٓائ۪لَ اذْكُرُوا نِعْمَتِيَ الَّت۪ٓي
اَنْعَمْتُ عَلَيْكُمْ وَاَنّ۪ي فَضَّلْتُكُمْ عَلَى الْعَالَم۪ينَ ﴿١٢٢﴾ وَاتَّقُوا يَوْمًا
لَا تَجْز۪ي نَفْسٌ عَنْ نَفْسٍ شَيْـًٔا وَلَا يُقْبَلُ مِنْهَا عَدْلٌ وَلَا تَنْفَعُهَا
شَفَاعَةٌ وَلَا هُمْ يُنْصَرُونَ ﴿١٢٣﴾ وَاِذِ ابْتَلٰٓى اِبْرٰه۪يمَ رَبُّهُ بِكَلِمَاتٍ
فَاَتَمَّهُنَّ قَالَ اِنّ۪ي جَاعِلُكَ لِلنَّاسِ اِمَامًا قَالَ وَمِنْ ذُرِّيَّت۪ي قَالَ
لَا يَنَالُ عَهْدِي الظَّالِم۪ينَ ﴿١٢٤﴾ وَاِذْ جَعَلْنَا الْبَيْتَ مَثَابَةً لِلنَّاسِ
وَاَمْنًا وَاتَّخِذُوا مِنْ مَقَامِ اِبْرٰه۪يمَ مُصَلًّى وَعَهِدْنَٓا اِلٰٓى اِبْرٰه۪يمَ
وَاِسْمٰع۪يلَ اَنْ طَهِّرَا بَيْتِيَ لِلطَّٓائِف۪ينَ وَالْعَاكِف۪ينَ وَالرُّكَّعِ السُّجُودِ
﴿١٢٥﴾ وَاِذْ قَالَ اِبْرٰه۪يمُ رَبِّ اجْعَلْ هٰذَا بَلَدًا اٰمِنًا وَارْزُقْ اَهْلَهُ
مِنَ الثَّمَرَاتِ مَنْ اٰمَنَ مِنْهُمْ بِاللّٰهِ وَالْيَوْمِ الْاٰخِرِ قَالَ وَمَنْ كَفَرَ
فَاُمَتِّعُهُ قَل۪يلًا ثُمَّ اَضْطَرُّهُٓ اِلٰى عَذَابِ النَّارِ وَبِئْسَ الْمَص۪يرُ ﴿١٢٦﴾

وَاِذْ يَرْفَعُ

**120**- Ne cihû ne jî fileh heyanî tu nedî pey dînê wan, ew hîç ji te qayîl nabin. Bibêje: "Bêguman rêberiya rast, tenê rêberiya Xwedê Teala ye." Piştî zanîna ku ji te re hatiye; eger tu bidî pey hewesên wan, sond be ku ji (ezabê) Xwedê Teala ji bo te ne xwedî û piştevanek, ne jî arîkarek heye.

**121**- Ew ên ku me kitêb daye wan û bi duristî (ka çawa pêdivî ye wisa) wê dixwînin, ha ew baweriyê pê tînin. Çi kesê wê înkar bike, vêca yên di ziyanê de ew bi xwe ne.

**122**- Gelî zaroyên Îsraîl! Ew qencî û kerema ku min li we kir bînin bîra xwe. Bêguman min hûn di ser xelkê (dema we) re girtibûn.

**123**- Xwe ji tengezariya rojeke wisa biparêzin ku tê de kes ji ber kesî ve nayê cezakirin, ji ber tu kesî ve gerew nayê qebûlkirin, mehderî ji bo tu kesî feydê nade û ji bo tu kesî arîkarî nayê kirin.

**124**- Bênin bîra xwe; wê dema Xwedê Teala, Îbrahîmî bi çend gotinan îmtîhan kir. Vêca Îbrahîm di cih de ew gotin bi kar anî. (Xwedê Teala) Got: "Bêguman ez ê te ji bo mirovan bikim rêber û pêşeng)." (Îbrahîm) got: "(Xwedayê min!) Ji zuriyeta min jî (hinekan bike rêber û pêşeng)." Xwedê Teala got: "Soza min (bi rêberiyê) negihîje mirovên stemkar.

Di ayeta pîroz de bêjeya "Îmam" derbas bû ku me jî ew bi Rêber tercume kir. Ji îmamtiyê daxwaz îmamtiya dînî ye ku ew jî pêxemberî ye. Yên sitemkar û zalim ji wê bêpar û mehrûm in.

**125** –Wê demê Me Ke'be ji bo mirovan kire cihekî bêrîdar û ewlegeh. Me ji mirovan re got: "Hûn jî meqamê Îbrahîm ji xwe re bikin nimêjgeh. Me ferman li Îbrahîm û Îsmaîl kir ku hûn ê mala min ji bo tewafkaran, î'tîkafkaran, rukû'karan û secdekaran paqij bikin."

**126**- Wê dema Îbrahîm got: "Xwedayê min! Vê derê bike bajarekî aram û êmin û niştecihên wê, ew ên ku bi Xweda û roja axretê bawerî anîn bi texlîtên fêkiyan rizqdar bike." Xweda got: "Kesê kafir bibe ez ê li dinyayê rizqê wî bidimê û demeke kurt wî pê biçêjînim, paşê (bi sedem kafiriya wî) ez ê wî bikêşim azara êgir." Ew çi pîs war e!

وَاِذْ يَرْفَعُ اِبْرٰهٖيمُ الْقَوَاعِدَ مِنَ الْبَيْتِ وَاِسْمٰعٖيلُؕ رَبَّنَا تَقَبَّلْ
مِنَّاؕ اِنَّكَ اَنْتَ السَّمٖيعُ الْعَلٖيمُ ﴿١٢٧﴾ رَبَّنَا وَاجْعَلْنَا مُسْلِمَيْنِ لَكَ
وَمِنْ ذُرِّيَّتِنَٓا اُمَّةً مُسْلِمَةً لَكَۖ وَاَرِنَا مَنَاسِكَنَا وَتُبْ عَلَيْنَاۚ
اِنَّكَ اَنْتَ التَّوَّابُ الرَّحٖيمُ ﴿١٢٨﴾ رَبَّنَا وَابْعَثْ فٖيهِمْ رَسُولًا
مِنْهُمْ يَتْلُوا عَلَيْهِمْ اٰيَاتِكَ وَيُعَلِّمُهُمُ الْكِتَابَ وَالْحِكْمَةَ
وَيُزَكّٖيهِمْؕ اِنَّكَ اَنْتَ الْعَزٖيزُ الْحَكٖيمُ ﴿١٢٩﴾ وَمَنْ يَرْغَبُ عَنْ
مِلَّةِ اِبْرٰهٖيمَ اِلَّا مَنْ سَفِهَ نَفْسَهُؕ وَلَقَدِ اصْطَفَيْنَاهُ فِي الدُّنْيَاۚ
وَاِنَّهُ فِي الْاٰخِرَةِ لَمِنَ الصَّالِحٖينَ ﴿١٣٠﴾ اِذْ قَالَ لَهُ رَبُّهُٓ اَسْلِمْۙ
قَالَ اَسْلَمْتُ لِرَبِّ الْعَالَمٖينَ ﴿١٣١﴾ وَوَصّٰى بِهَٓا اِبْرٰهٖيمُ بَنٖيهِ
وَيَعْقُوبُؕ يَا بَنِيَّ اِنَّ اللّٰهَ اصْطَفٰى لَكُمُ الدّٖينَ فَلَا تَمُوتُنَّ
اِلَّا وَاَنْتُمْ مُسْلِمُونَؕ ﴿١٣٢﴾ اَمْ كُنْتُمْ شُهَدَٓاءَ اِذْ حَضَرَ يَعْقُوبَ
الْمَوْتُۙ اِذْ قَالَ لِبَنٖيهِ مَا تَعْبُدُونَ مِنْ بَعْدٖيؕ قَالُوا نَعْبُدُ
اِلٰهَكَ وَاِلٰهَ اٰبَٓائِكَ اِبْرٰهٖيمَ وَاِسْمٰعٖيلَ وَاِسْحٰقَ اِلٰهًا وَاحِدًاۚ
وَنَحْنُ لَهُ مُسْلِمُونَ ﴿١٣٣﴾ تِلْكَ اُمَّةٌ قَدْ خَلَتْۚ لَهَا مَا كَسَبَتْ
وَلَكُمْ مَا كَسَبْتُمْۚ وَلَا تُسْـَٔلُونَ عَمَّا كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿١٣٤﴾

**127-** Bênin bîra xwe; wê dema Îbrahîm û Îsmaîl hîmên Beytê bilind kirin (û gotin:) "Xwedayê me! Ji me qebûl bike, bêguman her Tu yî, yê bihîzer, yê zana."

**128-** "Xwedayê me! Me her duyan ji bo xwe radest bike û ji zuriyeta me umeteke misliman derîne, rê û nîşanên heccê nîşanî me bide û tobeya me qebûl bike. Bêguman her Tu yî yê tobepejrên, yê dilovîn."

**129-** "Xwedayê me! Ji zaroyên me re pêxemberekî ji navwan bişîne ku ayetên te ji wan re bixwîne, wan fêrî Kitêb û hîkmetê bike û wan (ji guneh û şirkê) paqij bike. Bêguman her Tu yî yê ezîz, yê hekîm."

**130 -** Ma ji yê aqilsivik pê ve kî berê xwe ji dînê Îbrahîm vedigerîne? Sond be; Me ew li cîhanê (bi pêxemberî) bijartiye û bêguman ew di axretê de jî teqez ji yên havildar û yên bikêrhatî ye.

**131-** Dema Xwedayê wî jê re got: "Misliman bibe (radestî ber fermana Xwedayê xwe bibe)!" Got: "Ez radestî ber fermana Xwedayê alemê bûm."

**132-** Îbrahîm wesiyeta dînê heq li zarokên xwe kir û Yaqûb jî (got;) "Ey zarokên min! bêguman Xwedê Teala ev dîn (îslam) ji bo we hilbijartiye. Naxwe li serê bijîn û li serê bimirin."

**133-** Yan jî ma hûn di dema mirina Yaqûb, li cem wî hazir bûn, dema ji zarokên xwe re got: "Hûn ê piştî min ji kê re îbadetê bikin?" Gotin: "Em ê îbadetê ji Xwedayê te re û ji Xwedayê bav û bapîrên te Îbrahîm, Îsmaîl û Îshaq re bikin, ku ew Xwedayekî bi tenê ye û em jê re berdest in.

**134-** (Gelî cihûyan!) Ew umetek bûn, hatin û çûn. Tiştê ku wan qezenckirî ji wan re ye û tiştê ku we qezenckirî ji we re ye. Hûn ji tiştên ku wan kiriye berpirs nayên dîtin, (bes hûn ji kirinên xwe berpirs in).

وَقَالُوا كُونُوا هُودًا اَوْ نَصَارٰى تَهْتَدُوا قُلْ بَلْ مِلَّةَ اِبْرٰهِيمَ
حَنِيفًا وَمَا كَانَ مِنَ الْمُشْرِكِينَ ١٣٥ قُولُوا اٰمَنَّا بِاللّٰهِ وَمَا
اُنْزِلَ اِلَيْنَا وَمَا اُنْزِلَ اِلٰى اِبْرٰهِيمَ وَاِسْمٰعِيلَ وَاِسْحٰقَ
وَيَعْقُوبَ وَالْاَسْبَاطِ وَمَا اُوتِيَ مُوسٰى وَعِيسٰى وَمَا اُوتِيَ
النَّبِيُّونَ مِنْ رَبِّهِمْ لَا نُفَرِّقُ بَيْنَ اَحَدٍ مِنْهُمْ وَنَحْنُ لَهُ
مُسْلِمُونَ ١٣٦ فَاِنْ اٰمَنُوا بِمِثْلِ مَا اٰمَنْتُمْ بِهِ فَقَدِ اهْتَدَوْا
وَاِنْ تَوَلَّوْا فَاِنَّمَا هُمْ فِي شِقَاقٍ فَسَيَكْفِيكَهُمُ اللّٰهُ وَهُوَ
السَّمِيعُ الْعَلِيمُ ١٣٧ صِبْغَةَ اللّٰهِ وَمَنْ اَحْسَنُ مِنَ اللّٰهِ صِبْغَةً
وَنَحْنُ لَهُ عَابِدُونَ ١٣٨ قُلْ اَتُحَاجُّونَنَا فِي اللّٰهِ وَهُوَ رَبُّنَا
وَرَبُّكُمْ وَلَنَا اَعْمَالُنَا وَلَكُمْ اَعْمَالُكُمْ وَنَحْنُ لَهُ مُخْلِصُونَ
١٣٩ اَمْ تَقُولُونَ اِنَّ اِبْرٰهِيمَ وَاِسْمٰعِيلَ وَاِسْحٰقَ وَيَعْقُوبَ
وَالْاَسْبَاطَ كَانُوا هُودًا اَوْ نَصَارٰى قُلْ ءَاَنْتُمْ اَعْلَمُ اَمِ اللّٰهُ
وَمَنْ اَظْلَمُ مِمَّنْ كَتَمَ شَهَادَةً عِنْدَهُ مِنَ اللّٰهِ وَمَا اللّٰهُ بِغَافِلٍ
عَمَّا تَعْمَلُونَ ١٤٠ تِلْكَ اُمَّةٌ قَدْ خَلَتْ لَهَا مَا كَسَبَتْ
وَلَكُمْ مَا كَسَبْتُمْ وَلَا تُسْئَلُونَ عَمَّا كَانُوا يَعْمَلُونَ ١٤١



**135**- Ehlî kitêban (cihû û filehan ji mislimanan re) got: “Bibin cihû yan jî bibin fileh, hingê hûn ê bi ser riya rast ve bibin.” Bibêje: “Nexêr, wisa nîn e, belkî em ê bidin pey dînê Îbrahîm ku ew ji baweriyên xelet parastî bû û ew ji muşrikan jî nebû.”

**136**- (Gelî mislimanan!) Bibêjin: “Me bi Xwedê Teala û Qur’ana ku ji me re hatî, bi ya ku ji Îbrahîm, Îsmaîl, Îshaq, Yaqûb û neviyên wî re û bi ya ku ji Mûsa û Îsa re û bi ya ku ji pêxemberên din re, ji nik Xwedayê wan hatî şandin, bawerî anî. Em tu ferqiyê (cudahiyê) naêxin navbera yekê ji wan û em tenê radestî ber fermana Xwedê Teala bûne.”

**137**- Eger ew jî (xwedîkitêb) mîna yê ku we bawerî pê anî, baweriyê bînin, vêca bi rastî ew li ser riya rast in. Na! Eger ew berê xwe biguherînin, ew her di rêşaşiyê de ne. Êdî Xwedê Teala li hember wan besî te ye. Her Ew e, yê bihîzer, ê zana.

**138**- Xwe bi dînê Xweda birengînin (angu bi îslamê bigirin da hûn bi reng û nîşanên îslamê bên naskirin). Ma ji dînê Xweda (nîşan û rengên Xweda) çêtir û delaltir çi heye? Em her jê re îbadetê dikin.

**139**- (Ya Muhemmed!) Bibêje: “Ma hûn der barê Xwedê de, bi me re dikevin nîqaşê? Hal ev e ku Xweda hem Xwedayê me hem jî Xwedayê we ye. (Cezayê) ya ku em dikin ji me re ye û (cezayê) ya ku hûn dikin ji we re ye. (Hûn çawa bi me re dikevin nîqaşê,) rewş ev e ku em bes ji bo Xweda îbadetê dikin û hevpişkan (şirîkan) jê re çênakin (û hûn jê re çêdikin).

**140**- (Gelî yên xwedîkitêb!) “Ma hûn bi rastî dibêjin ku Îbrahîm, Îsmaîl, Îshaq, Yaqûb û neviyên wan, cihû yan jî fileh bûn? Bibêje: “Ma hûn bêhtir dizanin an jî Xwedê Teala? Ma ji wî kesê ku rastiyê (ew a der heqê pêxember de ya di Tewrat û Incîlê de ku ji mirovan) vedişêre zalimtir kî heye? Muheqeq Xwedê Teala ji ya ku hûn dikin ne bêagah e.

**141**- Ew umetek bûn, hatin û çûn. Tiştê ku wan bi dest xistî ji wan re ye û yê ku we bi dest xistî ji we re ye û ya ku ew dikin hûn jê ne berpirs in, (tenê hûn ji kirinên xwe berpirs in).

سَيَقُولُ السُّفَهَٓاءُ مِنَ النَّاسِ مَا وَلّٰيهُمْ عَنْ قِبْلَتِهِمُ الَّتِي
كَانُوا عَلَيْهَاۜ قُلْ لِلّٰهِ الْمَشْرِقُ وَالْمَغْرِبُۜ يَهْدِي مَنْ يَشَٓاءُ
اِلٰى صِرَاطٍ مُسْتَقِيمٍ ﴿١٤٢﴾ وَكَذٰلِكَ جَعَلْنَاكُمْ اُمَّةً وَسَطًا
لِتَكُونُوا شُهَدَٓاءَ عَلَى النَّاسِ وَيَكُونَ الرَّسُولُ عَلَيْكُمْ شَهِيدًاۜ
وَمَا جَعَلْنَا الْقِبْلَةَ الَّتِي كُنْتَ عَلَيْهَٓا اِلَّا لِنَعْلَمَ مَنْ يَتَّبِعُ الرَّسُولَ
مِمَّنْ يَنْقَلِبُ عَلٰى عَقِبَيْهِۜ وَاِنْ كَانَتْ لَكَبِيرَةً اِلَّا عَلَى الَّذِينَ
هَدَى اللّٰهُۜ وَمَا كَانَ اللّٰهُ لِيُضِيعَ اِيمَانَكُمْۜ اِنَّ اللّٰهَ بِالنَّاسِ
لَرَؤُفٌ رَحِيمٌ ﴿١٤٣﴾ قَدْ نَرٰى تَقَلُّبَ وَجْهِكَ فِي السَّمَٓاءِۚ
فَلَنُوَلِّيَنَّكَ قِبْلَةً تَرْضٰيهَاۖ فَوَلِّ وَجْهَكَ شَطْرَ الْمَسْجِدِ الْحَرَامِۜ
وَحَيْثُ مَا كُنْتُمْ فَوَلُّوا وُجُوهَكُمْ شَطْرَهُۜ وَاِنَّ الَّذِينَ
اُوتُوا الْكِتَابَ لَيَعْلَمُونَ اَنَّهُ الْحَقُّ مِنْ رَبِّهِمْۜ وَمَا اللّٰهُ
بِغَافِلٍ عَمَّا يَعْمَلُونَ ﴿١٤٤﴾ وَلَئِنْ اَتَيْتَ الَّذِينَ اُوتُوا الْكِتَابَ
بِكُلِّ اٰيَةٍ مَا تَبِعُوا قِبْلَتَكَۚ وَمَٓا اَنْتَ بِتَابِعٍ قِبْلَتَهُمْۚ
وَمَا بَعْضُهُمْ بِتَابِعٍ قِبْلَةَ بَعْضٍۜ وَلَئِنِ اتَّبَعْتَ اَهْوَٓاءَهُمْ
مِنْ بَعْدِ مَا جَٓاءَكَ مِنَ الْعِلْمِۙ اِنَّكَ اِذًا لَمِنَ الظَّالِمِينَ ﴿١٤٥﴾

**142**- Ji mirovan ên bêaqil wê bibêjin: “Ma çi tiştî, berê wan ji qibleya wan a ku berê li ser bûn, dagerand? Bibêje: “Rojhilat û rojava (her du) milkê Xwedê ne. Ew kê bivê berê wî dide bal riya heq ve.”

Gava Resûlê Ekrem (s.) hîcretî Medînê kir, mislimanan şanzdeh-hivdeh mehan berê xwe dane Qudsê û nimêj kirine. Lê belê ev yek bû sedem ku cihû di ser xwe ve biçin û li nav xelkê gotin: “Muhemmed û hevalên xwe nizanin ka qibleya wan ku der e; me rê şanî wan da ye. Vêca Resûlullah (s) berê xwe da asîmanan û li ber Xwedayê xwe geriya ku qibleya îslamê bi xwe nîşanî wan bide. Êdî piştî vî duayê pêxember, fermana îlahî ji wan re hat ku berê xwe ji Qudsê bi bal Ke‘bê ve vegerînin. Êdî ev ayet di wê behsê de nazil bû.

**143**- Her wiha me hûn kirin umeteke navîncî da ku hûn li ser mirovan bibin şahid û Pêxember jî li ser we bibe şahid. Me berê te ji wê qibleya ku tu berê li ser bûyî guherand, da ku em bizanin ka kî dê bide pey pêxember û kî dê bi paş ve bizivire, bibe kafir. Çendî ku ev berguherandin (ya ji Qudsê bi bal Ke‘bê ve) giran be jî, lê belê ji bo wan ên ku Xwedê riya rast nîşanî wan daye teqez ne giran e. Bi vê fermanê Xweda nimêja we (ya ku we berê xwe dabû Qudsê) betal nake. Bêguman Xwedê pir dilşewat e, dilovîn e.

Ev ayet der heqê hin sehabiyên Pêxember de hatiye ku ew li ser qibleya pêşîn miribûn. Xwediyên wan ji pêxember re gotin: “Ey pêxemberê Xwedê! Birayên me li ser qibla ewilî mirine ku di nimêja xwe de berê xwe didane Qudsê. Xwedê jî berê te ji Qudsê vegerand bal Ke’bê ve, vêca gelo dê rewşa wan çawa be?”

**144**- (Ya Muhemmed!) Bi rastî em dibînin ku berê te ber bi esmanan ve digere (bi hêviya ku Ke’be bibe qible). Êdî teqez em ê berê te vegerînin ser qibleyeke ku tu pê qayîl î. Naxwe berê xwe bizivirîne aliyê mizgefta pîroz (Ke‘bê). Hûn li ku dibin bibin êdî berê xwe ber bi Ke‘bê ve bizivirînin. Bêguman ên xwedankitêb baş dizanin ku ev (berzivirandin) ji cem Xwedayê wan e û heq e. Xwedê ji ya ew dikin teqez ne bêagah e.

**145**- Sond be, eger tu her celebê ayetan (ku ji bo te rastdêr bin) ji yên xwedankitêb re bînî; dîsa jî ew dê berê xwe nedin qibleya te û tu jî ne ew î ku berê xwe bidî qibleya wan. Hin ji wan jî dê berê xwe nedin qibleya yên din. Eger piştî wehya ku ji te re hatî, tu bidî pey hewesên wan, bêguman wê demê teqez tu ji stemkaran î.

الَّذِينَ اٰتَيْنَاهُمُ الْكِتَابَ يَعْرِفُونَهُ كَمَا يَعْرِفُونَ اَبْنَاۤءَهُمْؕ وَاِنَّ
فَرِيقًا مِنْهُمْ لَيَكْتُمُونَ الْحَقَّ وَهُمْ يَعْلَمُونَ ﴿١٤٦﴾ اَلْحَقُّ مِنْ
رَبِّكَ فَلَا تَكُونَنَّ مِنَ الْمُمْتَرِينَ ﴿١٤٧﴾ وَلِكُلٍّ وِجْهَةٌ هُوَ مُوَلِّيهَا
فَاسْتَبِقُوا الْخَيْرَاتِؕ اَيْنَ مَا تَكُونُوا يَأْتِ بِكُمُ اللّٰهُ جَمِيعًاؕ
اِنَّ اللّٰهَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ ﴿١٤٨﴾ وَمِنْ حَيْثُ خَرَجْتَ
فَوَلِّ وَجْهَكَ شَطْرَ الْمَسْجِدِ الْحَرَامِؕ وَاِنَّهُ لَلْحَقُّ مِنْ رَبِّكَؕ
وَمَا اللّٰهُ بِغَافِلٍ عَمَّا تَعْمَلُونَ ﴿١٤٩﴾ وَمِنْ حَيْثُ خَرَجْتَ
فَوَلِّ وَجْهَكَ شَطْرَ الْمَسْجِدِ الْحَرَامِؕ وَحَيْثُ مَا كُنْتُمْ فَوَلُّوا
وُجُوهَكُمْ شَطْرَهُ لِئَلَّا يَكُونَ لِلنَّاسِ عَلَيْكُمْ حُجَّةٌ اِلَّا
الَّذِينَ ظَلَمُوا مِنْهُمْ فَلَا تَخْشَوْهُمْ وَاخْشَوْنِي وَلِاُتِمَّ نِعْمَتِي
عَلَيْكُمْ وَلَعَلَّكُمْ تَهْتَدُونَ ﴿١٥٠﴾ كَمَا اَرْسَلْنَا فِيكُمْ رَسُولًا
مِنْكُمْ يَتْلُوا عَلَيْكُمْ اٰيَاتِنَا وَيُزَكِّيكُمْ وَيُعَلِّمُكُمُ الْكِتَابَ
وَالْحِكْمَةَ وَيُعَلِّمُكُمْ مَا لَمْ تَكُونُوا تَعْلَمُونَ ﴿١٥١﴾ فَاذْكُرُونِي
اَذْكُرْكُمْ وَاشْكُرُوا لِي وَلَا تَكْفُرُونِ ﴿١٥٢﴾ يَا اَيُّهَا الَّذِينَ
اٰمَنُوا اسْتَعِينُوا بِالصَّبْرِ وَالصَّلٰوةِؕ اِنَّ اللّٰهَ مَعَ الصَّابِرِينَ ﴿١٥٣﴾

وَلَا

**146-** Ew ên ku me kitêb dayî wan, çawa ku zarokên xwe nas dikin her wisa Pêxember jî nas dikin. Bêguman komek ji wan digel ku dizanin jî heqiyê vedişêrin.

**147-** (Ev guhertina qibleyê) heq e, ji cem Xwedayê te ye. Vêca nebe ji yên bi şik û guman!

**148-** Ji bo her umetekê qibleyek heye ku ew berê xwe didinê. Naxwe (gelî mumînan!) ji bo qenciyê bi hev re pêşbaziyê bikin. Hûn li ku dibin bibin, Xwedê dê we tevan bîne heşrê (da ku her yek cezayê xwe wergire). Bêguman Xweda li ser her tiştî qadir e.

**149-** Çi cihê tu pê ve biçî seferê (di nimêjê de) berê xwe bide aliyê Mizgefta Heramê. Bêguman ev ji cem Xwedayê te fermaneke heq e ku ji bo te hatiye. Xwedê ji tiştê ku hûn dikin ne bêagah e.

**150-** (Belê hebîbê min!) Kîjan cihê tu pê de herî seferê (di nimêjê de) berê xwe bide aliyê Mizgefta Heramê. (Gelî umetê) hûn jî li ku derê dibin bibin (li ser nimêjê) berê xwe bidin aliyê Mizgefta Heramê da ku hênceta mirovan (ku bikarin li hember we bi kar bînin) li ser we pêk neyê. Tenê yên ku neheqiyê dikin vê (wekî delîl) li hemberî we bi kar tînin. Naxwe hûn ji (gotinên) wan netirsin! Tenê ji min bitirsin ku ez qenciya xwe ya li ser we temam bikim û da ku hûn riya rast bibînin.

**151-** Her wiha me pêxemberek ji nav we ji bo we şand da ku ayetên me ji we re bixwîne, we (ji qirêja şirkê) paqij bike, we hînî Qur'an û hîkmetê bike û we fêrî tiştê ku hûn pê nizanin bike.

**152-** Naxwe hûn (bi îbadetkirinê) min di bîr bînin da ku ez jî (bi xelatkirin û efûkirinê) we di bîr bînim. Şêkiriya min bikin û li pêşberî min nankoriyê mekin.

**153-** Gelî yên ku bawerî anîne! (Ji bo xweşbextiya axretê) pişta xwe bi sebir û nimêjê xurt bikin. Bêguman Xwedê teqez digel sebirkêşan e.

Lewra bi sebr û tehlîqurpandinê hûn dê bigihin hemû fezîlet, bêhnpakî û başiyan. Bi xêra nimêjê jî hûn dê xwe ji hemû rezalet, hetîketî û riswatiyan biparêzin.

وَلَا تَقُولُوا لِمَنْ يُقْتَلُ فِي سَبِيلِ اللّٰهِ اَمْوَاتٌ بَلْ اَحْيَاءٌ وَلٰكِنْ
لَا تَشْعُرُونَ ﴿١٥٤﴾ وَلَنَبْلُوَنَّكُمْ بِشَيْءٍ مِنَ الْخَوْفِ وَالْجُوعِ
وَنَقْصٍ مِنَ الْاَمْوَالِ وَالْاَنْفُسِ وَالثَّمَرَاتِ وَبَشِّرِ الصَّابِرِينَ ﴿١٥٥﴾
اَلَّذِينَ اِذَا اَصَابَتْهُمْ مُصِيبَةٌ قَالُوا اِنَّا لِلّٰهِ وَاِنَّا اِلَيْهِ رَاجِعُونَ
﴿١٥٦﴾ اُولٰئِكَ عَلَيْهِمْ صَلَوَاتٌ مِنْ رَبِّهِمْ وَرَحْمَةٌ وَاُولٰئِكَ هُمُ
الْمُهْتَدُونَ ﴿١٥٧﴾ اِنَّ الصَّفَا وَالْمَرْوَةَ مِنْ شَعَائِرِ اللّٰهِ فَمَنْ حَجَّ
الْبَيْتَ اَوِ اعْتَمَرَ فَلَا جُنَاحَ عَلَيْهِ اَنْ يَطَّوَّفَ بِهِمَا وَمَنْ تَطَوَّعَ
خَيْرًا فَاِنَّ اللّٰهَ شَاكِرٌ عَلِيمٌ ﴿١٥٨﴾ اِنَّ الَّذِينَ يَكْتُمُونَ مَا اَنْزَلْنَا
مِنَ الْبَيِّنَاتِ وَالْهُدٰى مِنْ بَعْدِ مَا بَيَّنَّاهُ لِلنَّاسِ فِي الْكِتَابِ
اُولٰئِكَ يَلْعَنُهُمُ اللّٰهُ وَيَلْعَنُهُمُ اللَّاعِنُونَ ﴿١٥٩﴾ اِلَّا الَّذِينَ
تَابُوا وَاَصْلَحُوا وَبَيَّنُوا فَاُولٰئِكَ اَتُوبُ عَلَيْهِمْ وَاَنَا التَّوَّابُ
الرَّحِيمُ ﴿١٦٠﴾ اِنَّ الَّذِينَ كَفَرُوا وَمَاتُوا وَهُمْ كُفَّارٌ اُولٰئِكَ
عَلَيْهِمْ لَعْنَةُ اللّٰهِ وَالْمَلٰئِكَةِ وَالنَّاسِ اَجْمَعِينَ ﴿١٦١﴾ خَالِدِينَ
فِيهَا لَا يُخَفَّفُ عَنْهُمُ الْعَذَابُ وَلَا هُمْ يُنْظَرُونَ ﴿١٦٢﴾
وَاِلٰهُكُمْ اِلٰهٌ وَاحِدٌ لَا اِلٰهَ اِلَّا هُوَ الرَّحْمٰنُ الرَّحِيمُ ﴿١٦٣﴾

**154**- Ji wan ên ku di riya Xwedê de hatine kuştin re nebêjin: "Ew mirî ne!" Nexêr, ew sax in, lê belê hûn pê nahisin û tê nagihîjin.

**155**- Sond be; em ê bi hinekî ji tirsê û birçîbûnê, bi kêmkirina mal û can û kêmkirina mêweyên we, we îmtîhan bikin (ka kî li ser belayê sebirkêş e û kî na) û mizgînê bide yên sebirkêş.

**156**- Ew sebirkêşên ku dema belayek tê serê wan, dibêjin "Em hemû (bende)yên Xwedê ne û em ê li wî jî vegerin."

**157**- Ha ew in yên ku ji Xwedayê wan rehmet û dilovanî li wan dibare û her ew in yên ku li ser rêka heq rasterê bûne.

Ev ayetên pîroz di bara wan her çardeh (14) kesan de daketine ku li Şerê Bedrê yê pîroz şehîd ketine. Ev ayet, nîşan dide ku şehîd nemirî ne; dijîn. Ev ayet delîleke xurt e ku li gorî wê hem ezab heye hem jî kêf û xweşî. Tirs, birsîtî, xizanî, mirin, nesaxî her yek ji van li cîhanê imtîhanek e. Tu kes ji ber wan nafilite; her dê bimire.

**158**- Bêguman **Sefa** û **Merwe** ji nîşanên Xwedê ne. Naxwe kî bi sedema **hecccê** yan jî bi sedema **Umrê** here seredana Beytê, li serê tu guneh nîn e ku di navbera her duyan de here û were. Kî bi dilê xwe bixwaze qenciyekê bike, bêguman Xwedê şukirdar e, zana ye.

**159**- Bêguman ew ên ku delîl û ayetên me yên ronker, ew ên ku me ji mirovan re hinartî piştî ku me di kitêbê de (di Tewrat û Incîlê de) eşkere kirin, vedişêrin. Ha ew in yên ku Xwedê lanetê li wan dibarîne û yên lanetkar jî lanetê li wan dibarînin.

**160**- Tenê wan ên ku tobe kirin, xwe sererast kirin û heqî (ya veşartî) eşkere kirin, ji lanetê xelas bûne. Ha ez tobeya wan qebûl dikim û Ez im her yê tobepejrên, yê dilovîn.

**161**- Bêguman ew ên ku kafir in û li ser kufrê mirine, laneta Xwedê, ya firîşte û mirovan tev li ser wan be!

**162**- Ew ê heta bi hetayê di nava lanetê de bimînin, ne ezab li ser wan tê sivikkirin ne jî (bi çavê merhemetê) li rûyê wan tê nêrîn.

**163**- (Gelî mirovan!) Xwedayê we Xwedayekî bi tek û tenê ye. Ji Wî pê ve tu Xweda nîn in. Ew e yê rehman, yê rehîm.

اِنَّ فٖى خَلْقِ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَاخْتِلَافِ الَّيْلِ وَالنَّهَارِ
وَالْفُلْكِ الَّتٖى تَجْرٖى فِى الْبَحْرِ بِمَا يَنْفَعُ النَّاسَ وَمَٓا اَنْزَلَ اللّٰهُ
مِنَ السَّمَٓاءِ مِنْ مَٓاءٍ فَاَحْيَا بِهِ الْاَرْضَ بَعْدَ مَوْتِهَا وَبَثَّ فٖيهَا
مِنْ كُلِّ دَٓابَّةٍ وَتَصْرٖيفِ الرِّيَاحِ وَالسَّحَابِ الْمُسَخَّرِ بَيْنَ
السَّمَٓاءِ وَالْاَرْضِ لَاٰيَاتٍ لِقَوْمٍ يَعْقِلُونَ ﴿١٦٤﴾ وَمِنَ النَّاسِ مَنْ
يَتَّخِذُ مِنْ دُونِ اللّٰهِ اَنْدَادًا يُحِبُّونَهُمْ كَحُبِّ اللّٰهِ وَالَّذٖينَ
اٰمَنُٓوا اَشَدُّ حُبًّا لِلّٰهِ وَلَوْ يَرَى الَّذٖينَ ظَلَمُٓوا اِذْ يَرَوْنَ الْعَذَابَ
اَنَّ الْقُوَّةَ لِلّٰهِ جَمٖيعًا وَاَنَّ اللّٰهَ شَدٖيدُ الْعَذَابِ ﴿١٦٥﴾
اِذْ تَبَرَّاَ الَّذٖينَ اتُّبِعُوا مِنَ الَّذٖينَ اتَّبَعُوا وَرَاَوُا الْعَذَابَ
وَتَقَطَّعَتْ بِهِمُ الْاَسْبَابُ ﴿١٦٦﴾ وَقَالَ الَّذٖينَ اتَّبَعُوا لَوْ اَنَّ
لَنَا كَرَّةً فَنَتَبَرَّاَ مِنْهُمْ كَمَا تَبَرَّؤُا مِنَّا كَذٰلِكَ يُرٖيهِمُ اللّٰهُ
اَعْمَالَهُمْ حَسَرَاتٍ عَلَيْهِمْ وَمَا هُمْ بِخَارِجٖينَ مِنَ النَّارِ ﴿١٦٧﴾
يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ كُلُوا مِمَّا فِى الْاَرْضِ حَلَالًا طَيِّبًا وَلَا تَتَّبِعُوا
خُطُوَاتِ الشَّيْطَانِ اِنَّهُ لَكُمْ عَدُوٌّ مُبٖينٌ ﴿١٦٨﴾ اِنَّمَا يَأْمُرُكُمْ
بِالسُّٓوءِ وَالْفَحْشَٓاءِ وَاَنْ تَقُولُوا عَلَى اللّٰهِ مَا لَا تَعْلَمُونَ ﴿١٦٩﴾
وَاِذَا

**164**- Bêguman di xuliqandina erd û asîmanan, di guherîna şev û rojê de, di keştiyên ku ji bo feydeya însanan li ser deryayê dikişin û di wê baranê de ya ku Xwedê ji asîmanan dibarîne -vêca bi wê baranê erda ku berê ji bêavî hişk bûbû bi hêşînahiyê vedijîne- û di her cureyên jîndaran de ku li rûyê erdê belav bûne û di tevgera ba û ewrên fermanber ên di navbera erd û asîman de, helbet ji bo qewmekî bîrewer re (di van tevan de) nîşan û delîl hene.

**165**- Hinek mirov hene ku ji bilî Xwedê jê re hevta û havalan çêdikin û mîna ku ji Xwedê hez dikin ji wan jî hez dikin. Belê ew ên ku bawerî anîn ji wan bêhtir ji Xwedê hez dikin. Eger ew ên ku (bi hevtaçêkirinê) zulimkar in, dema ezabê dibînin ku (berê bidîtaya) hêz hemû ya Xwedê ye û ezabê Wî jî pir dijwar e (wan dê ji Xwedê Teala re hevta çênekiraya).

**166**- Hingê, pêşrew xwe ji peyrewên xwe dûr dixin û hingî her du alî jî ezabê dibînin û her wiha destê wan ji hev diqetin.

**167**- Yên dûvketî dibêjin: "Xwezî careke din em vegeriyana dinyayê, vêca wekî ku ew vêga xwe ji me dûr dikin, me yê jî xwe ji wan dûr bikira!" Ha wisa Xwedê kar û kiryarên wan dide rûyên wan, li ser wan dike derd û xem, dibe kul û poşmanî û ew hîç ji êgir dernayên.

Mirovên ku li dinyayê li pey şopa hin kesan diçin û hîç nafikirin ku wa ye rêya ew tê de diçin, şaş e. Ew dê bi çavên xwe bibînin ku li axretê ew rêber dê zû xwe ji wan dûr bikin û li wan nebin xwedî. Lê wê çaxê her du kom (pêşrew û peyrew) dê ezabê çetîn bibînin û bikevin navê û hingî dê fêm bikin, êdî neşên xwe ji êgir xilas jî bikin. Vêca peyrewên xapiyayî dê bipeyivin, lê peyivîna wan dê karekî nede wan. Lewra wan li cîhanê şansê xwe ji destê xwe berdaye. Êdî hew keysa wan li pêşrewan tê. Naxwe divê mirov li dinyayê şareza be û beriya ku çav bi rojeke wiha çetîn bikeve, divê binêre ka li dûv kê diçe û hevaltiya kê dike!

**168**- Gelî mirovan! Ji tiştên helal û pak ên li ser erdê bixwin û nedin pey şopên şeytên. Bêguman şeytan ji we re neyarekî eşkere ye.

**169**-Bêguman ew (şeytan) bes neqencî û nelirêtiyê dide ber we da ku hûn wê bikin û da li ser navê Xweda ya ku hûn pê nizanin bibêjin.

وَاِذَا قِيلَ لَهُمُ اتَّبِعُوا مَٓا اَنْزَلَ اللّٰهُ قَالُوا بَلْ نَتَّبِعُ مَٓا اَلْفَيْنَا
عَلَيْهِ اٰبَٓاءَنَاؕ اَوَلَوْ كَانَ اٰبَٓاؤُ۬هُمْ لَا يَعْقِلُونَ شَيْـًٔا وَلَا
يَهْتَدُونَ ﴿١٧٠﴾ وَمَثَلُ الَّذِينَ كَفَرُوا كَمَثَلِ الَّذِى يَنْعِقُ بِمَا
لَا يَسْمَعُ اِلَّا دُعَٓاءً وَنِدَٓاءًۜ صُمٌّ بُكْمٌ عُمْىٌ فَهُمْ لَا
يَعْقِلُونَ ﴿١٧١﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذِينَ اٰمَنُوا كُلُوا مِنْ طَيِّبَاتِ مَا
رَزَقْنَاكُمْ وَاشْكُرُوا لِلّٰهِ اِنْ كُنْتُمْ اِيَّاهُ تَعْبُدُونَ ﴿١٧٢﴾ اِنَّمَا
حَرَّمَ عَلَيْكُمُ الْمَيْتَةَ وَالدَّمَ وَلَحْمَ الْخِنْزِيرِ وَمَٓا اُهِلَّ بِهٖ
لِغَيْرِ اللّٰهِۚ فَمَنِ اضْطُرَّ غَيْرَ بَاغٍ وَلَا عَادٍ فَلَٓا اِثْمَ عَلَيْهِؕ
اِنَّ اللّٰهَ غَفُورٌ رَحِيمٌ ﴿١٧٣﴾ اِنَّ الَّذِينَ يَكْتُمُونَ مَٓا اَنْزَلَ
اللّٰهُ مِنَ الْكِتَابِ وَيَشْتَرُونَ بِهٖ ثَمَنًا قَلِيلًاۙ اُولٰٓئِكَ مَا
يَأْكُلُونَ فِى بُطُونِهِمْ اِلَّا النَّارَ وَلَا يُكَلِّمُهُمُ اللّٰهُ يَوْمَ
الْقِيٰمَةِ وَلَا يُزَكِّيهِمْۚ وَلَهُمْ عَذَابٌ اَلِيمٌ ﴿١٧٤﴾ اُولٰٓئِكَ الَّذِينَ
اشْتَرَوُا الضَّلَالَةَ بِالْهُدٰى وَالْعَذَابَ بِالْمَغْفِرَةِۚ فَمَٓا اَصْبَرَهُمْ
عَلَى النَّارِ ﴿١٧٥﴾ ذٰلِكَ بِاَنَّ اللّٰهَ نَزَّلَ الْكِتَابَ بِالْحَقِّۜ
وَاِنَّ الَّذِينَ اخْتَلَفُوا فِى الْكِتَابِ لَفِى شِقَاقٍ بَعِيدٍ ﴿١٧٦﴾

**170**- Dema ji wan re tê gotin Bidin pey wehya ku Xwedê Teala li ser pêxemberê xwe nazil kiriye, dibêjin: “Na! Em ê bidin pey tiştê ku me bav û bapîrên xwe li serê dîtiye.” Ma gelo bav û bapîrên wan ji wehya Xwedê bêhay bin û ne li ser rêka rast bin (dê bidin pey şopa wan)?

**171**- Rewşa kafiran dişibe rewşa wî (şivanî) ku ji gazî û qîrînê pê ve tiştekî din nabihîze û dîsa jî diqîre. Ew ker in, lal in û kor in, vêca ew vê yekê nafikirin.

**172**- Gelî yên ku bawerî anîne! Ji wî rizqê pak û helal ê ku me daye we bixwin, vexwin û şukrê Xweda bikin, eger bi rastî hûn ji bo wî tenê evdîniyê dikin.

**173**- Bêguman Xwedê Teala bes goştê heywanên mirarbûyî, xwînê, goştê berêz û qurbana ku ne li ser navê Xwedê hatibe şerjêkirin, li we heram kiriye. Lê kî ji mecbûrî, ne bi niyeta heramxwarinê û ne zêdeyî hewcedariya xwe bixwe, guneh li serê tune ye. Bêguman Xweda gunehjêbir e, dilovîn e.

**Mecbûriyet** di Îslamê de tune ye. Lê belê zerûret heye û heramiyê ji holê radike. Mirovê ku ji ber sedemeke ku ne di dest wî de ye mecbûr bimîne tiştekî heram bixwe, yan jî karekî ne helal bike, bi şertê ku ji tixûbî nebihure û wî helal nedêre, vêca bi qasî zerûretê dikare bixwe û di vî halî de jê re guneh jî tun e.

**174**-Bêguman ew ên ku tiştê Xwedê di kitêbê de hinartî vedişêrin û bi erzanî difroşin, ha ew ji êgir pê ve tiştekî din naxwin. Roja qiyametê Xwedê bi wan re napeyive û wan (bi efûkirina gunehan) paqij nake û ji wan re azareke jandar heye.

**175**- Ew ên hanê, ew kes in ku wan rasterêtî daye bi rêşaşiyê û lêborîna gunehan daye bi azarê. Ma çi qas bêhnfireh in li ser (qezenckirina azara) êgir?!

**176**- Ev (ezab) ji ber wê ye ku bêguman Xwedê kitêb (Qur’an) bi heqî nazil kiriye (û dîsa jî ew tê de ketine gumanê û bawerî pê neanîn). Bêguman ew ên ku di der barê kitêbê (Qur’anê) de ketine îxtîlafê, helbet ew di nakokiyeke dûrî heqiyê de ne.

Haxamên cihûyan salixên Pêxemberê me yên ku di Tewratê de hatibûn gotin veşartin û di hember vê kirina xwe de ji xwe re pere wergirtin. Van ayetan qala vê bizava wan a kirêt kiriye û nakokiya nava wan aniye zimên.

لَيْسَ الْبِرَّ اَنْ تُوَلُّوا وُجُوهَكُمْ قِبَلَ الْمَشْرِقِ وَالْمَغْرِبِ وَلٰكِنَّ
الْبِرَّ مَنْ اٰمَنَ بِاللّٰهِ وَالْيَوْمِ الْاٰخِرِ وَالْمَلٰٓئِكَةِ وَالْكِتَابِ وَالنَّبِيّ۪نَۚ
وَاٰتَى الْمَالَ عَلٰى حُبِّه۪ ذَوِي الْقُرْبٰى وَالْيَتَامٰى وَالْمَسَاك۪ينَ
وَابْنَ السَّب۪يلِ وَالسَّٓائِل۪ينَ وَفِي الرِّقَابِۚ وَاَقَامَ الصَّلٰوةَ وَاٰتَى
الزَّكٰوةَۚ وَالْمُوفُونَ بِعَهْدِهِمْ اِذَا عَاهَدُواۚ وَالصَّابِر۪ينَ فِي
الْبَأْسَٓاءِ وَالضَّرَّٓاءِ وَح۪ينَ الْبَأْسِۜ اُو۬لٰٓئِكَ الَّذ۪ينَ صَدَقُواۜ وَاُو۬لٰٓئِكَ
هُمُ الْمُتَّقُونَ ﴿١٧٧﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا كُتِبَ عَلَيْكُمُ الْقِصَاصُ
فِي الْقَتْلٰىۜ اَلْحُرُّ بِالْحُرِّ وَالْعَبْدُ بِالْعَبْدِ وَالْاُنْثٰى بِالْاُنْثٰىۜ فَمَنْ
عُفِيَ لَهُ مِنْ اَخ۪يهِ شَيْءٌ فَاتِّبَاعٌ بِالْمَعْرُوفِ وَاَدَٓاءٌ اِلَيْهِ بِاِحْسَانٍۜ
ذٰلِكَ تَخْف۪يفٌ مِنْ رَبِّكُمْ وَرَحْمَةٌۜ فَمَنِ اعْتَدٰى بَعْدَ ذٰلِكَ
فَلَهُ عَذَابٌ اَل۪يمٌ ﴿١٧٨﴾ وَلَكُمْ فِي الْقِصَاصِ حَيٰوةٌ يَٓا اُو۬لِي الْاَلْبَابِ
لَعَلَّكُمْ تَتَّقُونَ ﴿١٧٩﴾ كُتِبَ عَلَيْكُمْ اِذَا حَضَرَ اَحَدَكُمُ الْمَوْتُ
اِنْ تَرَكَ خَيْرًاۚ اَلْوَصِيَّةُ لِلْوَالِدَيْنِ وَالْاَقْرَب۪ينَ بِالْمَعْرُوفِۚ
حَقًّا عَلَى الْمُتَّق۪ينَۜ ﴿١٨٠﴾ فَمَنْ بَدَّلَهُ بَعْدَ مَا سَمِعَهُ فَاِنَّمَٓا
اِثْمُهُ عَلَى الَّذ۪ينَ يُبَدِّلُونَهُۜ اِنَّ اللّٰهَ سَم۪يعٌ عَل۪يمٌۜ ﴿١٨١﴾

فَمَنْ

**177**- Qencî, hema ne ew e ku hûn berê xwe bidin rojhilat an rojava. Lê belê qenciya esasî ew e ku mirov bi Xwedê Teala, bi roja axretê, bi firîşteyan, bi kitêban û bi pêxemberan baweriyê bîne û ji bo qayîliya Xweda malê xwe bide xizmên xwe, bide sêwî û xizanan, bide rêwî û parsekan û bide koleyan (ên ku ji bo azadiya xwe dixebitin) û paşê nimêja xwe bi tekûzî û berdewamî bike, zekatê bide û ew ên çaxê soz dan bi soza xwe re wefadar in û di wextê xizanî, naxweşî û cengê de bêhnfireh in. Ha ev (xwediyên van saloxan) in yên rast û durist û ew bi xwe ne yên teqwadar.

**178**- Gelî yên ku bawerî anîne! Di der heqê kuştinê de tolvekirin(a bi edaletî) li ser we hatiye ferzkirin; mirovê azad bi yê azad e, kole bi yê kole ye û jin bi jinê ye. Lê belê her kî ku ji aliyê birayê xwe ve were efûkirin (hingî **qisasiyet** dikeve), êdî (xwediyên kuştî) divê li hemberî kujerî bi rindî tev bigerin û pêwîst e kujer jî bi rindî xwîna wan bide. Ev ji cem Rebê we, ji bo we barsivikî û qenciyek e. Êdî kî (ji xwediyên kuştî) di piştî qebûlkirina xwînê de (bi ser kujerî de) êrîşê bike vêca ji bo wî azareke êşdar heye.

Qaîdeyeke bingehîn a îslamê ev e: Cezayê sûcdarî ji cinsê kirina wî lê tê birîn. Mirovê ku bi qesd yekî bikuje, eqil qebûl nake ku cezayê hepsê lê were birîn. Mirovê ku yek kuştibe, yan dê were kuştin, yan jî dê pere bide û were sirgûnkirin. Lê nayê hepiskirin. Bi rastî di îslamê de cihê efûyê jî pir mezin û girîng e. Heke mêrkuj ji aliyê xizmên kuştî ve were efûkirin, ji kuştinê xilas dibe, lê divê xwîna kuştî bide. Di vê ayeta pîroz de behsa vî aliyî jî hatiye kirin.

**179**- Gelî aqildaran! Ji bo we di tolvekirinê de jiyan heye, da ku hûn xwe biparêzin.

**180**- Dema yek ji we bikeve ber mirinê, eger malekî pir li dûv xwe bihêle, li ser we hatiye ferzkirin ku bi awayekî munasib (li gorî şerî'etê) ji dê û bavên xwe û xizmên xwe re wesiyetê bikin. (Ev wesiyet) di stûyê yê mutteqî de deyn e.

**181**- Êdî çi kesê wê qewîtiyê bibihîze û paşî wê biguherîne, gunehê wê di stûyê yê ku qewîtî guhertî de ye. Bêguman Xwedê Teala bihîzer e, zana ye.

فَمَنْ خَافَ مِنْ مُوصٍ جَنَفًا اَوْ اِثْمًا فَاَصْلَحَ بَيْنَهُمْ
فَلَٓا اِثْمَ عَلَيْهِۜ اِنَّ اللّٰهَ غَفُورٌ رَح۪يمٌ ﴿١٨٢﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ
اٰمَنُوا كُتِبَ عَلَيْكُمُ الصِّيَامُ كَمَا كُتِبَ عَلَى الَّذ۪ينَ
مِنْ قَبْلِكُمْ لَعَلَّكُمْ تَتَّقُونَۙ ﴿١٨٣﴾ اَيَّامًا مَعْدُودَاتٍۜ فَمَنْ
كَانَ مِنْكُمْ مَر۪يضًا اَوْ عَلٰى سَفَرٍ فَعِدَّةٌ مِنْ اَيَّامٍ اُخَرَۜ
وَعَلَى الَّذ۪ينَ يُط۪يقُونَهُ فِدْيَةٌ طَعَامُ مِسْك۪ينٍۜ فَمَنْ تَطَوَّعَ
خَيْرًا فَهُوَ خَيْرٌ لَهُۜ وَاَنْ تَصُومُوا خَيْرٌ لَكُمْ اِنْ كُنْتُمْ
تَعْلَمُونَ ﴿١٨٤﴾ شَهْرُ رَمَضَانَ الَّذ۪ٓي اُنْزِلَ ف۪يهِ الْقُرْاٰنُ
هُدًى لِلنَّاسِ وَبَيِّنَاتٍ مِنَ الْهُدٰى وَالْفُرْقَانِۚ فَمَنْ
شَهِدَ مِنْكُمُ الشَّهْرَ فَلْيَصُمْهُۜ وَمَنْ كَانَ مَر۪يضًا اَوْ
عَلٰى سَفَرٍ فَعِدَّةٌ مِنْ اَيَّامٍ اُخَرَۜ يُر۪يدُ اللّٰهُ بِكُمُ الْيُسْرَ
وَلَا يُر۪يدُ بِكُمُ الْعُسْرَۘ وَلِتُكْمِلُوا الْعِدَّةَ وَلِتُكَبِّرُوا اللّٰهَ
عَلٰى مَا هَدٰيكُمْ وَلَعَلَّكُمْ تَشْكُرُونَ ﴿١٨٥﴾ وَاِذَا سَاَلَكَ
عِبَاد۪ي عَنّ۪ي فَاِنّ۪ي قَر۪يبٌۜ اُج۪يبُ دَعْوَةَ الدَّاعِ اِذَا دَعَانِۙ
فَلْيَسْتَج۪يبُوا ل۪ي وَلْيُؤْمِنُوا ب۪ي لَعَلَّهُمْ يَرْشُدُونَ ﴿١٨٦﴾

**182**- Her kî ku ji meyla wesiyetkerî ya bi aliyê neheqiyê ve û ji meyla wî ya bi aliyê gunehkariyê ve endîşe bike, vêca di navbera wesiyetker û mîratxweran de sulhê bike, teqez li ser wî tu guneh nîn e. Bêguman Xwedê Teala gunehjêbir e, dilovîn e.

**183**-Gelî yên ku bawerî anîne! Rojîgirtin, çawa li ser umetên beriya we hatibû ferzkirin, her wiha li ser we jî hatiye ferzkirin; da ku hûn (bi rojîgirtinê) xwe (ji ezabê Xweda) biparêzin.

**184**- Li ser we hatiye ferzkirin ku hûn çend rojên bijimar rojiyê bigirin. Êdî kî ji we nexweş be yan jî rêwî be bila bi qasî rojên ku (di nexweşî û rêwîtiyê de) xwariye, di rojên din de rojiyê bigire. Ew kesên ku (ji kalîtî/pîrîtî û nexweşiyê) nikarin rojiyê bigirin, divê ji ber her rojekê ve gerewê bidin; ku (ji ber her rojekê ve) rojekê xwarinê bide belengazekî. Êdî kî ku bi dilê xwe zêdetir bide vêca ew jê re çêtir e. Eger hûn (digel zehmetiyan jî) rojiyê bigirin, êdî ew ji we re çêtir e eger hûn bizanin.

**185**- (Ev rojên bijimar) Meha Remezanê ye, ew a ku Qur'an tê de hatiye şandin ku ayetên wê ji mirovan re rêber in û ji bo veqetandina heq ji batilî delîlên eşkere ne. Êdî kî ku ji we ev meh bi ser de hat (ku li malê be û li ser hêza xw be), bila di vê mehê de rojî bigire. Çi kesê (ku di van rojan de) nexweş be yan jî rêwî be (rojiya xwe jî tê de negirtibe) bila bi qasî wan rojên ku di wan de rojî negirtiye, di rojên din de bigire. Xwedê Teala ji bo we rihetiyê dixwaze û zehmetiyê naxwaze, (hûn fitirîbin qeza bikin) da hûn meha Remazanê bêkêmasî bigrin û ji ber ku hûn rasterê kirin Xwedê Teala mezin bidêrin û (barê we sivik kir) da ku hûn Xwedê Teala bişêkirînin.

**186**- (Ya Muhemmed!) Dema evdên min pirsa min ji te kirin; bêguman ez pir nêzîkî wan im, muheqeq ez di hewara wî kesî de têm çi demê ew gazî min bike. Naxwe, bila evdên min guhdariya min bikin û bila baweriyê bi min bînin da ku ew bi ser rêka rast ve bibin.

٣٠ سُورَةُ الْبَقَرَةِ

اُحِلَّ لَكُمْ لَيْلَةَ الصِّيَامِ الرَّفَثُ اِلٰى نِسَٓائِكُمْ هُنَّ لِبَاسٌ
لَكُمْ وَاَنْتُمْ لِبَاسٌ لَهُنَّ عَلِمَ اللّٰهُ اَنَّكُمْ كُنْتُمْ تَخْتَانُونَ
اَنْفُسَكُمْ فَتَابَ عَلَيْكُمْ وَعَفَا عَنْكُمْ فَالْـٰٔنَ بَاشِرُوهُنَّ
وَابْتَغُوا مَا كَتَبَ اللّٰهُ لَكُمْ وَكُلُوا وَاشْرَبُوا حَتّٰى يَتَبَيَّنَ
لَكُمُ الْخَيْطُ الْاَبْيَضُ مِنَ الْخَيْطِ الْاَسْوَدِ مِنَ الْفَجْرِ
ثُمَّ اَتِمُّوا الصِّيَامَ اِلَى الَّيْلِ وَلَا تُبَاشِرُوهُنَّ وَاَنْتُمْ
عَاكِفُونَ فِي الْمَسَاجِدِ تِلْكَ حُدُودُ اللّٰهِ فَلَا تَقْرَبُوهَا
كَذٰلِكَ يُبَيِّنُ اللّٰهُ اٰيَاتِهِ لِلنَّاسِ لَعَلَّهُمْ يَتَّقُونَ ﴿١٨٧﴾ وَلَا
تَاْكُلُٓوا اَمْوَالَكُمْ بَيْنَكُمْ بِالْبَاطِلِ وَتُدْلُوا بِهَٓا اِلَى الْحُكَّامِ
لِتَاْكُلُوا فَرِيقًا مِنْ اَمْوَالِ النَّاسِ بِالْاِثْمِ وَاَنْتُمْ تَعْلَمُونَ ﴿١٨٨﴾
يَسْـَٔلُونَكَ عَنِ الْاَهِلَّةِ قُلْ هِيَ مَوَاقِيتُ لِلنَّاسِ وَالْحَجِّ
وَلَيْسَ الْبِرُّ بِاَنْ تَاْتُوا الْبُيُوتَ مِنْ ظُهُورِهَا وَلٰكِنَّ
الْبِرَّ مَنِ اتَّقٰى وَاْتُوا الْبُيُوتَ مِنْ اَبْوَابِهَا وَاتَّقُوا اللّٰهَ
لَعَلَّكُمْ تُفْلِحُونَ ﴿١٨٩﴾ وَقَاتِلُوا فِي سَبِيلِ اللّٰهِ الَّذِينَ
يُقَاتِلُونَكُمْ وَلَا تَعْتَدُوا اِنَّ اللّٰهَ لَا يُحِبُّ الْمُعْتَدِينَ ﴿١٩٠﴾

وَاقْتُلُوهُمْ

**187**- Di şevên Remezanê de çûyîna nivînên jinên we li we hatiye serbestkirin. Ew ji bo we cil in (kêmasiyên we vedişêrin), hûn jî ji bo wan cil in (kêmasiyên wan pêk tînin). Xwedê Teala bi we dizanî ku hûn xwe nagirin û (bi çûna nivînên wan) hûn ê bêbextiyê bi xwe re bikin, vêca Xwedê Teala (bi rakirina hukmê heramiyê) toba we qebûl kir û li kêmasiyên we bihurî. Êdî ji vir û pê de (di şevên Remezanê de) herin nivîna hevserên xwe û ya Xweda ji bo we nivîsî jê bixwazin. (Bi şev) heyanî ku tayê spî ji tayê reş (sibeh ji şevê) kifş bibe, bixwin û vexwin. Piştî şefeq da, rojiyê bidomînin heyanî êvarê. Dema hûn bi qesda î'tîkafê (îbadetkirinê) li mizgeftan bin, qet neçin nivînên hevserên xwe. Ev sînorên (qedexeyên) Xwedê Teala ne, vêca ji van sînoran neborin! Her wiha Xwedê Teala ayetên xwe ji mirovan re eşkere dike da ku ew xwe biparêzin.

**188**- Malên hev di navbera xwe de bi neheqî nexwin û ji bo ku hûn hinekî ji malên mirovan bi gunehkarî û şadezorî bixwin, bi zanîn mal nedin fermandaran.

**189**- (Ya Muhemmed!) Der heqê heyvê de ji te pirsê dikin. Bibêje: Ew ji bo mirovan û bi taybetî ji bo heccê pîvanên **demî** ne (meriv bi wan roj û heyf û salên xwe dijimêrin). Qencî, ne ew e ku hûn ji aliyê paş ve bikevin xaniyên xwe, belê qencî ew e ku mirov hay ji (emr û nehyê) Xwedê hebin. Di derî re bikevin xaniyên xwe û hay ji ferman û qedexeyên Xwedê hebin da ku hûn rizgar bibin.

Ji pêxemberê me hikmeta heyvê pirsîbûn; ku serê pêşî tenik dertê, dûv re her diçe mezin dibe, paşê jî dibe heyva çardehşevî û dîsan tenik dibe û winda dibe. Piştî windabûnê dîsa ji nû ve tê der. Bersiva ku di vê ayetê de hatiye dayîn; ev lebata hîvê ya di vî awayî de bi kêrî hesabkirina sala qemerî (heyvî) û bi taybetî jî bi kêrî zanîna rojên heccê tê. Dabaşeke din jî ev bû: berê dema ereban îhramên heccê li xwe dikir in jî ji heccê dizîvirîn, ne di derî re, lê ji paş ve diçûn malên xwe û ev yek xêr dizanîn. Vêca vê ayetê ev helwesta wan eşkere kir ku şaş e.

**190**- (Gelî bawermendan!) Di rêka Xwedê Teala de, li hember ên ku bi we re şer dikin, şer bikin û zinhar zêdegaviyê mekin! Bêguman Xwedê Teala ji stemkaran hez nake.

وَاقْتُلُوهُمْ حَيْثُ ثَقِفْتُمُوهُمْ وَاَخْرِجُوهُمْ مِنْ حَيْثُ اَخْرَجُوكُمْ
وَالْفِتْنَةُ اَشَدُّ مِنَ الْقَتْلِ وَلَا تُقَاتِلُوهُمْ عِنْدَ الْمَسْجِدِ الْحَرَامِ حَتّٰى
يُقَاتِلُوكُمْ فِيهِ فَاِنْ قَاتَلُوكُمْ فَاقْتُلُوهُمْ كَذٰلِكَ جَزَٓاءُ الْكَافِرِينَ ﴿١٩١﴾
فَاِنِ انْتَهَوْا فَاِنَّ اللّٰهَ غَفُورٌ رَحِيمٌ ﴿١٩٢﴾ وَقَاتِلُوهُمْ حَتّٰى لَا تَكُونَ فِتْنَةٌ
وَيَكُونَ الدِّينُ لِلّٰهِ فَاِنِ انْتَهَوْا فَلَا عُدْوَانَ اِلَّا عَلَى الظَّالِمِينَ ﴿١٩٣﴾ اَلشَّهْرُ
الْحَرَامُ بِالشَّهْرِ الْحَرَامِ وَالْحُرُمَاتُ قِصَاصٌ فَمَنِ اعْتَدٰى عَلَيْكُمْ
فَاعْتَدُوا عَلَيْهِ بِمِثْلِ مَا اعْتَدٰى عَلَيْكُمْ وَاتَّقُوا اللّٰهَ وَاعْلَمُوا اَنَّ اللّٰهَ مَعَ
الْمُتَّقِينَ ﴿١٩٤﴾ وَاَنْفِقُوا فِي سَبِيلِ اللّٰهِ وَلَا تُلْقُوا بِاَيْدِيكُمْ اِلَى التَّهْلُكَةِ
وَاَحْسِنُوا اِنَّ اللّٰهَ يُحِبُّ الْمُحْسِنِينَ ﴿١٩٥﴾ وَاَتِمُّوا الْحَجَّ وَالْعُمْرَةَ لِلّٰهِ
فَاِنْ اُحْصِرْتُمْ فَمَا اسْتَيْسَرَ مِنَ الْهَدْيِ وَلَا تَحْلِقُوا رُؤُسَكُمْ حَتّٰى يَبْلُغَ
الْهَدْيُ مَحِلَّهُ فَمَنْ كَانَ مِنْكُمْ مَرِيضًا اَوْ بِهِ اَذًى مِنْ رَاْسِهِ فَفِدْيَةٌ مِنْ
صِيَامٍ اَوْ صَدَقَةٍ اَوْ نُسُكٍ فَاِذَٓا اَمِنْتُمْ فَمَنْ تَمَتَّعَ بِالْعُمْرَةِ اِلَى الْحَجِّ
فَمَا اسْتَيْسَرَ مِنَ الْهَدْيِ فَمَنْ لَمْ يَجِدْ فَصِيَامُ ثَلٰثَةِ اَيَّامٍ فِي الْحَجِّ وَسَبْعَةٍ
اِذَا رَجَعْتُمْ تِلْكَ عَشَرَةٌ كَامِلَةٌ ذٰلِكَ لِمَنْ لَمْ يَكُنْ اَهْلُهُ حَاضِرِي
الْمَسْجِدِ الْحَرَامِ وَاتَّقُوا اللّٰهَ وَاعْلَمُوا اَنَّ اللّٰهَ شَدِيدُ الْعِقَابِ ﴿١٩٦﴾

**191**- Hûn li ku rastî wan (ên ku li hemberî we şer dikin) hatin, wan bikujin û ji cihê ku wan hûn jê derxistine, wan derbixin. Vegerandina muminan ji dînê wan, ji kuştinê xerabtir e. Heta ku ew li Mizgefta Heramê şerê we nekin, hûn bi wan re şer nekin. Êdî eger ew (li wê derê) bi we re şer bikin, hûn jî şerê wan bikin. Her wiha ye cezayê kafiran.

**192**- Eger ew dev ji vê (herba bi we re) berdin, êdî bêguman Xwedê Teala gunehjêbir e, dilovîn e.

**193**- Heta ku fitne nemîne û heta ku dîn bi tevayî nebe ji bo Xwedê Teala, bi wan re şer bikin. Vêca eger dev ji fitneyê berdin, îcar ji bilî stemkaran dijminatî li hemberî tu kesî nîn e.

**194**- Heyva ḥeramê (ya ku birêz û hurmet e û şer tê de heram e) bi meha heramê ye (;eger ew di wan mehan de bi we re şer bikin û hurmeta wê bişikînin hûn jî bi wan re şer bikin). Di binpêkirina qedexeyan de tolvekirin heye. Êdî kî êrîşî ser we bike, bi qasî êrîşa ku aniye ser we, hûn jî êrîşê bibin ser wî. Hay ji ferman û qedexeyên Xwedê Teala hebin û bizanin ku Xwedê Teala bi teqwadaran re ye.

**195**- (Gelî mumînan!) Malên xwe di riya Xwedê Teala de xerc bikin, (bi nexerckirina mal) xwe bi destên xwe navêjin xeterê û di her hal û karên xwe de qenciyê bikin, bêguman Xwedê Teala ji qencîkaran hez dike.

**196**- Ji bo qayîliya Xwedê Teala hecc û Umrê bi tekûzî pêk bînin. Eger hûn (bêyî îradeya xwe) ji wan bêne astengkirin, vêca ji wan heywanên ku dibine qurban hûn çi karibin wê ji bo qurbanê bişînin. Heta ku qurban negihîje cihê xwe (û neyê şerjêkirin) porê xwe kur mekin (ji îhraman dernekevin). Êdî kî ji we nexweş be, yan jî di serê wî de nexweşiyek hebe (ku hewceyî bi kurkirina porê xwe hebe û di îhraman de porê xwe kur bike), divê ji bedêlê ve (sê roj) rojî bigire, yan sedeqeyekê bide (şeş feqîran), yan jî qurbanekî şerjêbike. Dema hûn (ji dijminên xwe) ewle bûn, vêca ew kesê bixwaze heyanî rojên hecccê ji Umrê sûdê wergire, divê qurbaneke ku jê re hêsan be, şerjê bike. Kesên ku nikaribin qurbanekê şerjê bikin, bila sê rojan li heccê û heft rojan jî dema vegeriyan malê, bi tevayî deh rojan, rojî bigirin. Ev ê ku hatiye gotin ji bo wan kesan e ku malbatên wan ne li dorhêla Mizgefta Heramê ye (ew ên ku malbata wan li dora heremê ye, dema berî heccê 'umrê bikin, qurban yan jî rojî li wan nakeve). Hay ji mafê Xwedê yê li ser xwe hebin û bizanin ku ezabê Xwedê pir dijwar e.

اَلْحَجُّ اَشْهُرٌ مَعْلُومَاتٌ فَمَنْ فَرَضَ فِيهِنَّ الْحَجَّ
فَلَا رَفَثَ وَلَا فُسُوقَ وَلَا جِدَالَ فِي الْحَجِّ وَمَا
تَفْعَلُوا مِنْ خَيْرٍ يَعْلَمْهُ اللّٰهُ وَتَزَوَّدُوا فَاِنَّ خَيْرَ
الزَّادِ التَّقْوٰى وَاتَّقُونِ يَٓا اُولِي الْاَلْبَابِ ﴿١٩٧﴾ لَيْسَ
عَلَيْكُمْ جُنَاحٌ اَنْ تَبْتَغُوا فَضْلًا مِنْ رَبِّكُمْ فَاِذَٓا
اَفَضْتُمْ مِنْ عَرَفَاتٍ فَاذْكُرُوا اللّٰهَ عِنْدَ الْمَشْعَرِ
الْحَرَامِ وَاذْكُرُوهُ كَمَا هَدٰيكُمْ وَاِنْ كُنْتُمْ مِنْ
قَبْلِهِ لَمِنَ الضَّٓالّ۪ينَ ﴿١٩٨﴾ ثُمَّ اَفِيضُوا مِنْ حَيْثُ اَفَاضَ
النَّاسُ وَاسْتَغْفِرُوا اللّٰهَ اِنَّ اللّٰهَ غَفُورٌ رَح۪يمٌ ﴿١٩٩﴾
فَاِذَا قَضَيْتُمْ مَنَاسِكَكُمْ فَاذْكُرُوا اللّٰهَ كَذِكْرِكُمْ
اٰبَٓاءَكُمْ اَوْ اَشَدَّ ذِكْرًا فَمِنَ النَّاسِ مَنْ يَقُولُ رَبَّنَٓا
اٰتِنَا فِي الدُّنْيَا وَمَا لَهُ فِي الْاٰخِرَةِ مِنْ خَلَاقٍ ﴿٢٠٠﴾
وَمِنْهُمْ مَنْ يَقُولُ رَبَّنَٓا اٰتِنَا فِي الدُّنْيَا حَسَنَةً وَفِي
الْاٰخِرَةِ حَسَنَةً وَقِنَا عَذَابَ النَّارِ ﴿٢٠١﴾ اُو۬لٰٓئِكَ لَهُمْ
نَص۪يبٌ مِمَّا كَسَبُوا وَاللّٰهُ سَر۪يعُ الْحِسَابِ ﴿٢٠٢﴾

وَاذْكُرُوا

**197**- Hecc di hin mehên melûm de ye, kî ku di wan mehan de (bi wergirtina îhramê) heccê li ser xwe ferz bike, êdî bila nêzî nivîna jina xwe nebe, ji riya Xwedê Teala dernekeve û gengeşî û pevçûnê neke. Hûn çi xêrê bikin Xwedê pê dizane. Ji bo çûna heccê (da ku hûn hewceyî kesî nebin) qûtê rê amade bikin, bêguman qûtê herî rind teqwadarî ye (ku meriv di rêka heccê de parsekiyê neke). Gelî bîreweran! Ji (pêkneanîna fermanên) min xwe biparêzin.

**198**- Li ser we tu guneh nîn e ku hûn ji Xwedayê xwe (bi rêka bazirganiyê) kerema Wî bixwazin. Êdî dema hûn ji Erefatê kişiyan vêca li Meş'erul Heramê (Muzdelîfê) zikrê Xwedê bikin. Çawa Xwedê hûn serwext kirin her wisa Wî bi bîr bînin. Çendî ku berê hûn rêwindabûyî bûn (û we nedizanî hûn ê çawa heccê bikin).

**199**- Paşê, ka çawa mirov (ji Muzdelîfê) dixuricin Mînayê, hûn jî (bi wan re û mîna wan) bixuricin wê derê (da ku wekhevî çêbe û fexr û kubarî rabe). Ji Xwedê Teala lêborîna (gunehên) xwe bixwazin; bêguman Xwedê gunehjêbir e, dilovîn e.

**200**- Dema we hecca xwe temam kir, çawa ku hûn bav û bapîrên xwe bi bîr tînin -hê ji wê jî bêhtir- Xwedayê xwe bi bîr bînin (ango bangezarê Xwedayê xwe bin). Vêca hin mirov hene ku (negihane raz û hîkmeta heccê, bi vî rengî daxwaza xwe) dibêjin: "Xwedayê me! Li dinyayê (para me) bide me." Rewş ev e ku di axretê de ji bo wî tu nesîb û par nîn e.

**201**- Hin jî hene ku dibêjin: "Xwedayê me! Li dinyayê qenciyê û li axretê jî qenciyê bide me û me ji azara êgir biparêze.

**202**- Evên hanê! Ji bo wan (li axretê) ji tiştên ku bi dest xistine nesîbekî mezin heye. Teqez hesabdîtina Xwedê pir bilez e.

حزب ٣

وَاذْكُرُوا اللّٰهَ فٖى اَيَّامٍ مَعْدُودَاتٍ فَمَنْ تَعَجَّلَ فٖى
يَوْمَيْنِ فَلَٓا اِثْمَ عَلَيْهِ وَمَنْ تَاَخَّرَ فَلَٓا اِثْمَ عَلَيْهِ لِمَنِ
اتَّقٰى وَاتَّقُوا اللّٰهَ وَاعْلَمُٓوا اَنَّكُمْ اِلَيْهِ تُحْشَرُونَ ٢٠٣
وَمِنَ النَّاسِ مَنْ يُعْجِبُكَ قَوْلُهُ فِى الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا وَيُشْهِدُ
اللّٰهَ عَلٰى مَا فٖى قَلْبِهٖ وَهُوَ اَلَدُّ الْخِصَامِ ٢٠٤ وَاِذَا تَوَلّٰى
سَعٰى فِى الْاَرْضِ لِيُفْسِدَ فٖيهَا وَيُهْلِكَ الْحَرْثَ وَالنَّسْلَ
وَاللّٰهُ لَا يُحِبُّ الْفَسَادَ ٢٠٥ وَاِذَا قٖيلَ لَهُ اتَّقِ اللّٰهَ
اَخَذَتْهُ الْعِزَّةُ بِالْاِثْمِ فَحَسْبُهُ جَهَنَّمُ وَلَبِئْسَ الْمِهَادُ ٢٠٦
وَمِنَ النَّاسِ مَنْ يَشْرٖى نَفْسَهُ ابْتِغَٓاءَ مَرْضَاتِ
اللّٰهِ وَاللّٰهُ رَؤُ۫فٌ بِالْعِبَادِ ٢٠٧ يَٓا اَيُّهَا الَّذٖينَ اٰمَنُوا ادْخُلُوا
فِى السِّلْمِ كَٓافَّةً وَلَا تَتَّبِعُوا خُطُوَاتِ الشَّيْطَانِ اِنَّهُ
لَكُمْ عَدُوٌّ مُبٖينٌ ٢٠٨ فَاِنْ زَلَلْتُمْ مِنْ بَعْدِ مَا جَٓاءَتْكُمُ
الْبَيِّنَاتُ فَاعْلَمُٓوا اَنَّ اللّٰهَ عَزٖيزٌ حَكٖيمٌ ٢٠٩ هَلْ
يَنْظُرُونَ اِلَّٓا اَنْ يَأْتِيَهُمُ اللّٰهُ فٖى ظُلَلٍ مِنَ الْغَمَامِ
وَالْمَلٰٓئِكَةُ وَقُضِىَ الْاَمْرُ وَاِلَى اللّٰهِ تُرْجَعُ الْاُمُورُ ٢١٠

**203**- Di çend rojên bijimar de (roja eydê û her sê rojên piştî wê) Xwedê bi tekbîr û tesbîhan bi bîr bînin. Vêca kî ku lez bike da ku di nav du rojan de ji Mînayê vegerê (Mekê) tu guneh li serê nîn e û kî ku dereng jî bimîne tu guneh li ser wî jî nîn e bi egera ku der barê mafê Xwedê de xwe biparêze. Hay ji emr û nehyê Xwedê hebin! Agahdar bin, birastî jî hûn hemû dê bi bal Wî ve bên komkirin.

**204**- Ji mirovan hin (munafiq) hene ku gotinên wan di bara jiyana dinyayê de te ecêbmayî dihêle û li ser a di dilê xwe de (ku ji her kesî bêhtir başiyê dixwazin) Xwedê dikin şahid. Hal ev e ku ew dijwartirîn dijmin in.

**205**- Dema ew kes (ji cem te rabû û) pişta xwe da te, li ser erdê digere da ku tê de xerabiyê bike û da ku çandinî û neslê jî wêran bike. Xwedê Teala ji tevlihevî û wêrankiriyê teqez hez nake.

**206**- Dema jê re bête gotin: Ji Xweda bitirse (dev ji kufr û nîfaqê berde); ji ber gunehên ku kiriye xweperestî û pozbilindiya cehaletê pê digire û ew berê wî didin ser gunehkariyê. Vêca dojeh besî wî ye û ew çi pîsecih e!

**207**- Hin mirov hene ku ji bo qayîlkirina Xweda canê xwe didin. Rewş ev e; Xwedê ji bo bendeyên xwe pir dilovîn e.

**208**- Gelî yên ku bawerî anîne! Hûn hemû û tev bi hev re misliman bibin (ji tevekê hukmên îslamê re berdest bibin) û nedine pey gavên şeytên! Bêguman ew ji bo we neyarekî eşkere ye.

**209**- Êdî, eger piştî delîlên eşkere ji we re hatin hûn ji rê derkevin, vêca bizanin ku bêguman Xwedê (di kar û barê xwe de) serdest e, hekîm e.

**210**- Ma ew (înadkarên kafir piştî hatina van nîşanên eşkere) li bendê ne ku Xwedê û firîşte di nav siyên ewran de werin (da ku wan helak bikin)?! Fermana Xweda (bi ezabdayîna wan) temam bû (vêca guhartin jê re nîn e). Encama her kar û barî bes bi bal Xwedê ve vedigere.

سَلْ بَنٖٓى اِسْرَٓائٖيلَ كَمْ اٰتَيْنَاهُمْ مِنْ اٰيَةٍ بَيِّنَةٍۜ وَمَنْ يُبَدِّلْ نِعْمَةَ
اللّٰهِ مِنْ بَعْدِ مَا جَٓاءَتْهُ فَاِنَّ اللّٰهَ شَدٖيدُ الْعِقَابِ ﴿٢١١﴾ زُيِّنَ
لِلَّذٖينَ كَفَرُوا الْحَيٰوةُ الدُّنْيَا وَيَسْخَرُونَ مِنَ الَّذٖينَ اٰمَنُواۢ
وَالَّذٖينَ اتَّقَوْا فَوْقَهُمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِۜ وَاللّٰهُ يَرْزُقُ مَنْ يَشَٓاءُ بِغَيْرِ
حِسَابٍ ﴿٢١٢﴾ كَانَ النَّاسُ اُمَّةً وَاحِدَةً فَبَعَثَ اللّٰهُ النَّبِيّٖنَ
مُبَشِّرٖينَ وَمُنْذِرٖينَۖ وَاَنْزَلَ مَعَهُمُ الْكِتَابَ بِالْحَقِّ لِيَحْكُمَ
بَيْنَ النَّاسِ فٖيمَا اخْتَلَفُوا فٖيهِۜ وَمَا اخْتَلَفَ فٖيهِ اِلَّا الَّذٖينَ اُو۫تُوهُ
مِنْ بَعْدِ مَا جَٓاءَتْهُمُ الْبَيِّنَاتُ بَغْيًا بَيْنَهُمْۚ فَهَدَى اللّٰهُ الَّذٖينَ
اٰمَنُوا لِمَا اخْتَلَفُوا فٖيهِ مِنَ الْحَقِّ بِاِذْنِهٖۜ وَاللّٰهُ يَهْدٖى مَنْ
يَشَٓاءُ اِلٰى صِرَاطٍ مُسْتَقٖيمٍ ﴿٢١٣﴾ اَمْ حَسِبْتُمْ اَنْ تَدْخُلُوا الْجَنَّةَ
وَلَمَّا يَأْتِكُمْ مَثَلُ الَّذٖينَ خَلَوْا مِنْ قَبْلِكُمْۜ مَسَّتْهُمُ الْبَأْسَٓاءُ
وَالضَّرَّٓاءُ وَزُلْزِلُوا حَتّٰى يَقُولَ الرَّسُولُ وَالَّذٖينَ اٰمَنُوا مَعَهُ مَتٰى
نَصْرُ اللّٰهِۜ اَلَٓا اِنَّ نَصْرَ اللّٰهِ قَرٖيبٌ ﴿٢١٤﴾ يَسْـَٔلُونَكَ مَاذَا يُنْفِقُونَۜ قُلْ
مَٓا اَنْفَقْتُمْ مِنْ خَيْرٍ فَلِلْوَالِدَيْنِ وَالْاَقْرَبٖينَ وَالْيَتَامٰى وَالْمَسَاكٖينِ
وَابْنِ السَّبٖيلِۜ وَمَا تَفْعَلُوا مِنْ خَيْرٍ فَاِنَّ اللّٰهَ بِهٖ عَلٖيمٌ ﴿٢١٥﴾

كُتِبَ

**211**- Ji zaroyên Îsraîl bipirse; ka me çend ayetên eşkere û ronker dane wan? Piştî ku ayetên me jê re hatin, kî ku ni'metên Xwedê (dînê heq bi kufrê) biguherîne, vêca bi rastî ezabê Xwedê pir dijwar e.

**212**- Jiyana dinyayê ji bo kafiran hatiye xemilandin û henekên xwe bi bawermendan dikin. Hal ev e ku yên teqwadar, roja qiyametê di ser wan re ne. Xwedê Teala ji kê re bivê bêhesab rizq didiyê.

**213**- Mirov, berê (li ser baweriya tewhîdê) yek umet bûn. Vêca Xwedê pêxember bi mîzgînberî û hişyarkerî şandin û bi wan re jî kitêb bi heqî şandin da ku di navbera mirovan de, li ser a bi hev ketin, hukm bikin. Di rastiya vê heqiyê de, piştî nîşanên eşkere ji wan re hatin, kes nekete îxtîlafê ji bilî yên ehlê kitêb ku ji çavnebarî ew ketin îxtîlafê. Li ser vê yekê, Xwedê bi destûra xwe ew heqiya ku ehlê delaletê li serê li hev nedikirin, bi bawermendan da serwextkirin. Xwedê, kî (riya rast) bivê berê wî dide riya rast.

**214**- Erê ma heta tiştê hatî serê xelkên beriya we neyê serê we ji we we ye hûn ê herin bihiştê? Wisa xizanî û tengasî bi ser wan de hat û ew wisa rahejiyan ku Pêxember û yên ku pê re bawerî anîbûn, gotin: "Ma arîkariya Xwedê dê kengê ji bo me bê?" (Wê demê mizgîniya Xweda ji wan re hat) Agahdar bin! Bêguman arîkariya Xwedê pir nêzîk e.

Di vê ayeta pîroz de toreyeke bênimûne heye. Ji bo mislimanan li cîhanê û axretê riya serkeftinê ev e: Divê îmanê bînin, bi eşq û şewq hewl bidin, bixebitin, li hemberî tengasî û nexweşiyan têbikoşin, guhên xwe nedin kêf û zewq û sistiyê û xwe ji şeytanê lanetî dûr bigirin. Yanî ji muminan re dibêje: "Gelî mislimanan! Heta ku karesat neyên serê we, heta ku hûn berdêlê nedin, hûn dê bi ser nekevin û hûn dê neçin bihiştê."

**215**- Ji te dipirsin; ka (di rêka Xwedê de) ew ê çi xerc bikin? Bibêje: "Xêra ku hûn didin; ew ji bo dê û bavan, lêzim û sêwiyan, belengaz û rêwiyan e. Hûn çi xêrê bikin, bêguman Xwedê pê dizane.

كُتِبَ عَلَيْكُمُ الْقِتَالُ وَهُوَ كُرْهٌ لَكُمْ وَعَسٰى اَنْ تَكْرَهُوا
شَيْـًٔا وَهُوَ خَيْرٌ لَكُمْ وَعَسٰى اَنْ تُحِبُّوا شَيْـًٔا وَهُوَ شَرٌّ
لَكُمْ وَاللّٰهُ يَعْلَمُ وَاَنْتُمْ لَا تَعْلَمُونَ ﴿٢١٦﴾ يَسْـَٔلُونَكَ عَنِ
الشَّهْرِ الْحَرَامِ قِتَالٍ فِيهِ قُلْ قِتَالٌ فِيهِ كَبِيرٌ وَصَدٌّ عَنْ
سَبِيلِ اللّٰهِ وَكُفْرٌ بِهِ وَالْمَسْجِدِ الْحَرَامِ وَاِخْرَاجُ اَهْلِهِ
مِنْهُ اَكْبَرُ عِنْدَ اللّٰهِ وَالْفِتْنَةُ اَكْبَرُ مِنَ الْقَتْلِ وَلَا يَزَالُونَ
يُقَاتِلُونَكُمْ حَتّٰى يَرُدُّوكُمْ عَنْ دِينِكُمْ اِنِ اسْتَطَاعُوا
وَمَنْ يَرْتَدِدْ مِنْكُمْ عَنْ دِينِهِ فَيَمُتْ وَهُوَ كَافِرٌ فَاُولٰٓئِكَ
حَبِطَتْ اَعْمَالُهُمْ فِي الدُّنْيَا وَالْاٰخِرَةِ وَاُولٰٓئِكَ اَصْحَابُ
النَّارِ هُمْ فِيهَا خَالِدُونَ ﴿٢١٧﴾ اِنَّ الَّذِينَ اٰمَنُوا وَالَّذِينَ
هَاجَرُوا وَجَاهَدُوا فِي سَبِيلِ اللّٰهِ اُولٰٓئِكَ يَرْجُونَ رَحْمَتَ
اللّٰهِ وَاللّٰهُ غَفُورٌ رَحِيمٌ ﴿٢١٨﴾ يَسْـَٔلُونَكَ عَنِ الْخَمْرِ
وَالْمَيْسِرِ قُلْ فِيهِمَا اِثْمٌ كَبِيرٌ وَمَنَافِعُ لِلنَّاسِ وَاِثْمُهُمَا
اَكْبَرُ مِنْ نَفْعِهِمَا وَيَسْـَٔلُونَكَ مَاذَا يُنْفِقُونَ قُلِ الْعَفْوَ
كَذٰلِكَ يُبَيِّنُ اللّٰهُ لَكُمُ الْاٰيَاتِ لَعَلَّكُمْ تَتَفَكَّرُونَ ﴿٢١٩﴾

**216**- Şerkirin (di rêya Xweda de) li ser we hatiye ferzkirin, rewş ev e ku ew bi we ne xweş e (û li ser we giran jî tê). Pêkan e hûn tiştekî nevên û ew ji bo we baş be û pêkan e hûn hez ji tiştekî bikin û ew ji bo we xerab be. Xwedê Teala dizane (ka çi ji bo we baş e û çi ne baş e), lê hûn nizanin.

**217**- Di bara şerê eşhurul hurûm de (mehên xwedan rûmet ên ku şer di wan de heram e) ji te dipirsin (ka ji bo wan helal e yan jî na?) Bibêje: Şerê di van mehan de gunehekî mezin e. Lê belê vegerandina mirovan ji riya Xweda, mandelekirina Xweda, astengkirina (xelkê ji) serdana Ke'bê û deranîna xelkê ji Mekkeyê; gunehên van li cem Xweda mezintir in. Muheqeq fitne (şirk û vegerandina muminan ji dînê wan) ji kuştinê mezintir e. Eger hêza wan têrê bike ew ê her şerê we bikin heta ku we ji dînê we vegerînin. Kî ji we ji dînê xwe vegere û li ser kufrê bimire; vêca ha ew kar û kiryarên wan li dinya û axretê pûç bûne. Ha ew xelkê dojehê ne û heta hetayê ew ê tê de bimînin.

**218**- Bêguman ew ên ku bawerî anîn û yên ku koçber bûn û di rêka Xwedê de cîhad kirin; ha ew dilovaniya Xwedê hêvî dikin. Xwedê gunehjêbir e, dilovîn e.

**219**- (Ya Muhemmed!) Mey (eraq) û qumarê ji te dipirsin. Bibêje: Di her duyan de jî gunehekî pir mezin heye û ji bo mirovan hin feyde jî hene. Lê belê gunehê her duyan jî ji feydeya wan mezintir e. Dîsa ji te dipirsin ma em çi bidin? Bibêje: Yê zêdeyî pêdiviyên xwe (bidin). Bi vî awayî Xwedê Teala ayetên xwe ji we re eşkere dike da hûn bifikirin/fehm bikin.

**Mey/eraq**, heram e. Dibe ku di dan û standina wê de ji hin kesan re hin feydên wê yên ticarî jî hebin. Lê belê hemin zerara wê ji fêdeya wê pirtir e. Wiha reng e qumar jî ji bo kesê ku qezenc kiriye feyda wê heye lê ji bo kesê ku jê çûye jî, zerara wê pir mezin e. Ji ber vê yekê qumar jî heram bûye. Birastî dema ev ayeta pîroz nazil bû, gelek mislimanan dev ji meyê berdan, lê hinekan hêjî vedixwar, lewra bi awayekî binbir nehatibû heramkirin. Lê belê dema ku ayeta "Sûreyê Maîde ya 90-91ê" hat, vêca ew bi tevahî û bi awayekî binbir heram kir, vêca misilmanan yekser dev jê berdan.

فِى الدُّنْيَا وَالْاٰخِرَةِۜ وَيَسْـَٔلُونَكَ عَنِ الْيَتَامٰىۜ قُلْ اِصْلَاحٌ
لَهُمْ خَيْرٌۜ وَاِنْ تُخَالِطُوهُمْ فَاِخْوَانُكُمْۜ وَاللّٰهُ يَعْلَمُ الْمُفْسِدَ
مِنَ الْمُصْلِحِۜ وَلَوْ شَٓاءَ اللّٰهُ لَاَعْنَتَكُمْۜ اِنَّ اللّٰهَ عَز۪يزٌ حَك۪يمٌ
٢٢٠ وَلَا تَنْكِحُوا الْمُشْرِكَاتِ حَتّٰى يُؤْمِنَّۜ وَلَاَمَةٌ مُؤْمِنَةٌ خَيْرٌ
مِنْ مُشْرِكَةٍ وَلَوْ اَعْجَبَتْكُمْۚ وَلَا تُنْكِحُوا الْمُشْرِك۪ينَ حَتّٰى
يُؤْمِنُواۜ وَلَعَبْدٌ مُؤْمِنٌ خَيْرٌ مِنْ مُشْرِكٍ وَلَوْ اَعْجَبَكُمْۜ
اُو۬لٰٓئِكَ يَدْعُونَ اِلَى النَّارِۚ وَاللّٰهُ يَدْعُٓوا اِلَى الْجَنَّةِ وَالْمَغْفِرَةِ
بِاِذْنِه۪ۚ وَيُبَيِّنُ اٰيَاتِه۪ لِلنَّاسِ لَعَلَّهُمْ يَتَذَكَّرُونَ ٢٢١ وَيَسْـَٔلُونَكَ
عَنِ الْمَح۪يضِۜ قُلْ هُوَ اَذًىۙ فَاعْتَزِلُوا النِّسَٓاءَ فِى الْمَح۪يضِۙ
وَلَا تَقْرَبُوهُنَّ حَتّٰى يَطْهُرْنَۚ فَاِذَا تَطَهَّرْنَ فَأْتُوهُنَّ مِنْ
حَيْثُ اَمَرَكُمُ اللّٰهُۜ اِنَّ اللّٰهَ يُحِبُّ التَّوَّاب۪ينَ وَيُحِبُّ
الْمُتَطَهِّر۪ينَ ٢٢٢ نِسَٓاؤُ۬كُمْ حَرْثٌ لَكُمْۖ فَأْتُوا حَرْثَكُمْ اَنّٰى
شِئْتُمْۘ وَقَدِّمُوا لِاَنْفُسِكُمْۜ وَاتَّقُوا اللّٰهَ وَاعْلَمُٓوا اَنَّكُمْ مُلَاقُوهُۜ
وَبَشِّرِ الْمُؤْمِن۪ينَ ٢٢٣ وَلَا تَجْعَلُوا اللّٰهَ عُرْضَةً لِاَيْمَانِكُمْ اَنْ
تَبَرُّوا وَتَتَّقُوا وَتُصْلِحُوا بَيْنَ النَّاسِۜ وَاللّٰهُ سَم۪يعٌ عَل۪يمٌ ٢٢٤

لَا يُؤَاخِذُكُمُ

**220**- Di dinya û axretê de (her çi ji bo we baş e bifikirin û li gorî wê tev bigerin). Di bara sêwiyan de ji te dipirsin (ka xwe têkilî wan bikin an na?) Bibêje: Sererastkirina kar û barên wan û perwerdekirina wan (ji dûrketina wan) çêtir e. Eger hûn (bi malê xwe) tevlî malê wan bibin, vêca (bizanin) ku ew birayên we ne. Xwedê dizane ka kî avaker e, kî xerabker e. Eger Xwedê bixwesta dê zor û zehmetî li we bikira. Bêguman Xwedê (di kare xwe de) serdest e, hekîm e.

**221**- (Gelî mislimanan!) Heta ew îmanê neyînin bi jinên muşrik re nezewicin. Qerwaşeke bawermend ji jineke azad a muşrik çêtir e, çendîn ew li xweşa we jî biçe. Keçên xwe jî li mêrên azad ên muşrik mehr nekin heya ku ew baweriyê neyînin. Koleyekî bawermend ji muşrikekî azad çêtir e; çendîn ew li xweşa we jî biçe. Ew (muşrik bi gotin û kiryarên xwe we) gazî bal êgir ve dikin. Xwedê jî bi destûra xwe we gazî bal bihişt û lêborînê ve dike, ayetên xwe ji mirovan re eşkere dike da qene bi bîr bînin (û tobe bikin).

**222**- (Ya Muhemmed!) Ji te pirsa heyzê (bênimêjiya jinan) dikin (ka di halê heyzê de çûna nivîna wan helal e yan na?) Bibêje: Ew (bênimêjiya jinan) eziyet û zerardayîn e (ji bo mêr û jinê). Di dema heyzê de xwe ji (çûna nivîna) jinan dûr bigirin û heya ku ew jê paqij nebin nêzîkî wan mebin. Dema ew jê paqij bûn (û xwe şûştin), êdî çawa ku Xwedê li we ferman kirî herin nivîna wan. Bêguman Xwedê Teala ji yên gelek tobekar hez dike û ji yên xwe paqij dikin hez dike.

**223**- Jinên we ji bo we zevî ne (cihê şînbûna kinêsa we ne), vêca hûn çawa dixwazin wisa herin zeviyên xwe û tiştên baş hilînin ji bo sûdwergirtina we ya di dahatûyê de. Hay ji ferman û qedexeyên Xwedê hebin û bizanin ku hûn ê teqez leqayî Xweda bibin. Mizgîniyê bide bawerdaran (ku padaşa wan bihişt e)!

**224**- Sonda xwe ya bi Xwedê Teala re nekin hêncet û mane ji bo ku hûn qencî û teqwadariyê nekin û xelkê li hev neyînin. Xwedê Teala bihîzer e, zana ye.

لَا يُؤَاخِذُكُمُ اللّٰهُ بِاللَّغْوِ فِى اَيْمَانِكُمْ وَلٰكِنْ يُؤَاخِذُكُمْ بِمَا
كَسَبَتْ قُلُوبُكُمْ وَاللّٰهُ غَفُورٌ حَلِيمٌ ٢٢٥ لِلَّذِينَ يُؤْلُونَ مِنْ نِسَائِهِمْ
تَرَبُّصُ اَرْبَعَةِ اَشْهُرٍ فَاِنْ فَاؤُ فَاِنَّ اللّٰهَ غَفُورٌ رَحِيمٌ ٢٢٦ وَاِنْ عَزَمُوا
الطَّلَاقَ فَاِنَّ اللّٰهَ سَمِيعٌ عَلِيمٌ ٢٢٧ وَالْمُطَلَّقَاتُ يَتَرَبَّصْنَ بِاَنْفُسِهِنَّ
ثَلٰثَةَ قُرُوءٍ وَلَا يَحِلُّ لَهُنَّ اَنْ يَكْتُمْنَ مَا خَلَقَ اللّٰهُ فِى اَرْحَامِهِنَّ
اِنْ كُنَّ يُؤْمِنَّ بِاللّٰهِ وَالْيَوْمِ الْاٰخِرِ وَبُعُولَتُهُنَّ اَحَقُّ بِرَدِّهِنَّ فِى
ذٰلِكَ اِنْ اَرَادُوا اِصْلَاحًا وَلَهُنَّ مِثْلُ الَّذِى عَلَيْهِنَّ بِالْمَعْرُوفِ
وَلِلرِّجَالِ عَلَيْهِنَّ دَرَجَةٌ وَاللّٰهُ عَزِيزٌ حَكِيمٌ ٢٢٨ اَلطَّلَاقُ مَرَّتَانِ
فَاِمْسَاكٌ بِمَعْرُوفٍ اَوْ تَسْرِيحٌ بِاِحْسَانٍ وَلَا يَحِلُّ لَكُمْ اَنْ
تَاْخُذُوا مِمَّا اٰتَيْتُمُوهُنَّ شَيْـًٔا اِلَّا اَنْ يَخَافَا اَلَّا يُقِيمَا حُدُودَ اللّٰهِ
فَاِنْ خِفْتُمْ اَلَّا يُقِيمَا حُدُودَ اللّٰهِ فَلَا جُنَاحَ عَلَيْهِمَا فِيمَا افْتَدَتْ
بِهِ تِلْكَ حُدُودُ اللّٰهِ فَلَا تَعْتَدُوهَا وَمَنْ يَتَعَدَّ حُدُودَ اللّٰهِ فَاُولٰئِكَ
هُمُ الظَّالِمُونَ ٢٢٩ فَاِنْ طَلَّقَهَا فَلَا تَحِلُّ لَهُ مِنْ بَعْدُ حَتّٰى تَنْكِحَ
زَوْجًا غَيْرَهُ فَاِنْ طَلَّقَهَا فَلَا جُنَاحَ عَلَيْهِمَا اَنْ يَتَرَاجَعَا اِنْ ظَنَّا
اَنْ يُقِيمَا حُدُودَ اللّٰهِ وَتِلْكَ حُدُودُ اللّٰهِ يُبَيِّنُهَا لِقَوْمٍ يَعْلَمُونَ ٢٣٠

**225**- Xwedê Teala di sondên we yên bêqesdî de li we nagire. Lê belê ji ber sondên ku we ji dil xwariye, li we digire. Xwedê gunehjêbir e, berbihêr e.

**226**- Ji bo wan kesên sond dixwin ku ew dê neçin nivîna jinên xwe, çar meh muhlet heye. Vêca eger ew (di vî mudetî de li jinên xwe) vegerin, êdî bêguman Xwedê Teala gunehjêbir e, dilovîn e.

**227**- Eger (piştî ku çar meh bihurîn û li jinên xwe) venegerin û biryara berdanê bidin. Êdî bêguman Xwedê bihîzer e, zana ye.

**228**- Jinên ku (ji mêrê xwe) hatine berdan, pêwîst e ew sê mudetan xwe bigirin (ango sê bênimêjî yan jî sê paqijiyan bibînin, paşê ew dikarin bizewicin). Eger ew (jin) bi rastî baweriyê bi Xwedê û roja qiyametê tînin, hîç ne durist e wî tiştê ku Xwedê Teala di malzaroka wan de afirandiye veşêrin. Di vî mudetî de (berî sê bênimêjî yan sê paqijî biqedin) ji mêrên wan re bêhtir heq heye ku wan (li xwe) vegerînin, eger ku lihevhatinê bixwazin. Ka çawa mafên mêran li ser jinan heye her wisa hin mafên jinan jî bi rindî li ser mêran heye û ji mêran re di ser wan re dereceyek heye. Xwedê serdest e, hekîm e.

**229**- Berdan (ya ku lêvegerîn pêkan e) du car in. Êdî; yan bi qencî li cem xwe hiştin e yan jî bi rindî û bi edaletî berdan e. (Gelî mêran!) Li we ne helal e malê ku we (bi mehr û xeynî wê jî) daye wan hûn ji wan bistînin. Lê belê ew mêr û jinên ku ji pêkneanîna tixûbên Xwedê Teala bitirsin, ew tiştekî din e. Gelî bawermendan! Eger hûn şikê bikin ku dê jin û mêr sînorên Xwedê Teala pêk neyînin, vêca hîç guneh li ser her duyan nîn e ku jin tiştekî bide mêrê xwe û xwe jê bide berdan. Ev tiştên ku hatine gotin tixûbên Xwedê ne. Zinhar wan binpê mekin! Kî ji tixûbên Xwedê derbas bibe, vêca ew stemkar bi xwe ne.

**230**- Vêca eger mêr, jinê (bi sê telaqan) berde, êdî li wî ne helal e (ku dîsa wê mehr bike) heyanî ku (ew jin) bi mêrekî din re nezewice. Eger wî (mêrê duyem jî) ew berda, êdî tu guneh li ser her duyan nîn e ku dîsa li hev vegerin, bi egera wan bawerî anîbe ku ew ê tixûbê Xweda bi cih bînin. Ev tixûb û biryarên Xweda ne, Xweda ji bo qewmekî ku dizanin û têdigihîjin, wan eşkere dike.

وَاِذَا طَلَّقْتُمُ النِّسَٓاءَ فَبَلَغْنَ اَجَلَهُنَّ فَاَمْسِكُوهُنَّ بِمَعْرُوفٍ اَوْ
سَرِّحُوهُنَّ بِمَعْرُوفٍ وَلَا تُمْسِكُوهُنَّ ضِرَارًا لِتَعْتَدُوا وَمَنْ يَفْعَلْ
ذٰلِكَ فَقَدْ ظَلَمَ نَفْسَهُ وَلَا تَتَّخِذُٓوا اٰيَاتِ اللّٰهِ هُزُوًا وَاذْكُرُوا نِعْمَتَ
اللّٰهِ عَلَيْكُمْ وَمَٓا اَنْزَلَ عَلَيْكُمْ مِنَ الْكِتَابِ وَالْحِكْمَةِ يَعِظُكُمْ بِهٖ
وَاتَّقُوا اللّٰهَ وَاعْلَمُٓوا اَنَّ اللّٰهَ بِكُلِّ شَيْءٍ عَلٖيمٌ ٢٣١ وَاِذَا طَلَّقْتُمُ
النِّسَٓاءَ فَبَلَغْنَ اَجَلَهُنَّ فَلَا تَعْضُلُوهُنَّ اَنْ يَنْكِحْنَ اَزْوَاجَهُنَّ اِذَا
تَرَاضَوْا بَيْنَهُمْ بِالْمَعْرُوفِ ذٰلِكَ يُوعَظُ بِهٖ مَنْ كَانَ مِنْكُمْ يُؤْمِنُ
بِاللّٰهِ وَالْيَوْمِ الْاٰخِرِ ذٰلِكُمْ اَزْكٰى لَكُمْ وَاَطْهَرُ وَاللّٰهُ يَعْلَمُ
وَاَنْتُمْ لَا تَعْلَمُونَ ٢٣٢ وَالْوَالِدَاتُ يُرْضِعْنَ اَوْلَادَهُنَّ حَوْلَيْنِ كَامِلَيْنِ
لِمَنْ اَرَادَ اَنْ يُتِمَّ الرَّضَاعَةَ وَعَلَى الْمَوْلُودِ لَهُ رِزْقُهُنَّ وَكِسْوَتُهُنَّ
بِالْمَعْرُوفِ لَا تُكَلَّفُ نَفْسٌ اِلَّا وُسْعَهَا لَا تُضَٓارَّ وَالِدَةٌ بِوَلَدِهَا وَلَا
مَوْلُودٌ لَهُ بِوَلَدِهٖ وَعَلَى الْوَارِثِ مِثْلُ ذٰلِكَ فَاِنْ اَرَادَا فِصَالًا عَنْ
تَرَاضٍ مِنْهُمَا وَتَشَاوُرٍ فَلَا جُنَاحَ عَلَيْهِمَا وَاِنْ اَرَدْتُمْ اَنْ
تَسْتَرْضِعُٓوا اَوْلَادَكُمْ فَلَا جُنَاحَ عَلَيْكُمْ اِذَا سَلَّمْتُمْ مَٓا اٰتَيْتُمْ
بِالْمَعْرُوفِ وَاتَّقُوا اللّٰهَ وَاعْلَمُٓوا اَنَّ اللّٰهَ بِمَا تَعْمَلُونَ بَصٖيرٌ ٢٣٣

وَالَّذٖينَ

**231**- (Gelî mêran!) Dema we jin berdan û wan jî mudeta xwe ya çavnêriyê (iddetê xwe) temam kir, êdî wan; an bi mehreke teze li cem xwe bigirin an jî bi rindî wan serbest berdin. Ji bo ku hûn dest dirêjî mafên wan bikin bi zordestî wan li cem xwe negirin. Çi kesê wisa bike êdî bi rastî zilmê li xwe dike. Ayetên Xwedê pêlîstok nedêrin. Nîmeta Xwedê ya ku li ser we ye û kitêb û hîkmeta ku ji bo we nazil kiriye ku pê şîretan li we dike, bi bîr bînin. Hay ji ferman û qedexeyên Xwedê hebin û bizanin ku bêguman Xwedê bi her tiştî dizane.

**232**- Dema ku we jin (kêmtirîn bi sê telaqan) berdan û wan jî civanê xwe temam kir, êdî dema ew û mêrên xwe di navbera xwe de bi rindî, (bi mehreke nû) li hev bizivirin, astengiyê dernexin. Ev a ha, yên ku bi Xwedê û roja axretê baweriyê tînin, ji bo xwe dikine pend û şîret. Eger hûn vê şîretê bigirin (û nebin asteng ji bo wan) teqez ji bo we her çêtir û paqijtir e. Xwedê dizane û hûn nizanin.

**233**- Dayîkên (ku hatine berdan) bila heya du salên tekûz şîr bidin zarokên xwe, ev rewş ji bo wan dê û bavan e ku bixwazin dema şîrdayînê temam bikin. Li gorî şerîet û adetan, bi qencî cil û xwarina dayîkan li ser bavê zarokan e. (Lewra) her kes tenê li gorî hêza xwe tê binbarkirin. Divê ne dayîk ji bo zaroka zerar lê were û ne jî bav ji ber zarokê zerar lê bê. Eynî wekî vê, li ser mîratxwerê bavê zarokî jî ev maf heye (piştî berdana diya wî ku bavê wî bimire divê warisên bavê zarok wê wezîfeyê bi cih bînin). Eger dê û bav, her du, bi hev bişêwirin; li hev bên û bixwazin zarok ji şîr vekin, vêca tu guneh li ser her duyan tune ye. Eger hûn bivên (ji bilî dayîka wî) bi jineke din bidin mijandin jî, tu guneh li ser we tune ye dema ku hûn heqê wê yî diyarkirî bi qencî bidinê. Xwe ji pêkneanîna (fermanên) Xwedê biparêzin û bizanin ku bêguman Xwedê bi karên ku hûn dikin bîner e.

Ev ayetên pîroz behsa jinberdanê, zewacê û dema iddeyê (bendemayînê) dikin. Herwiha ragihandine ku di paşiya dema iddeyê de mafê zewacê yê mêrê pêşî ye. Lêbelê heke ne bi dilê jinê be divê mêr bi zorê neke. Wiha reng e ku van ayetan behsa şîrdana zarokê, wezîfeya dê û bavan û behsa wextê şîrdanê kirine.

وَالَّذِينَ يُتَوَفَّوْنَ مِنْكُمْ وَيَذَرُونَ اَزْوَاجًا يَتَرَبَّصْنَ بِاَنْفُسِهِنَّ
اَرْبَعَةَ اَشْهُرٍ وَعَشْرًا فَاِذَا بَلَغْنَ اَجَلَهُنَّ فَلَا جُنَاحَ عَلَيْكُمْ
فِيمَا فَعَلْنَ فِى اَنْفُسِهِنَّ بِالْمَعْرُوفِ وَاللّٰهُ بِمَا تَعْمَلُونَ خَبِيرٌ
﴿٢٣٤﴾ وَلَا جُنَاحَ عَلَيْكُمْ فِيمَا عَرَّضْتُمْ بِهِ مِنْ خِطْبَةِ النِّسَاءِ
اَوْ اَكْنَنْتُمْ فِى اَنْفُسِكُمْ عَلِمَ اللّٰهُ اَنَّكُمْ سَتَذْكُرُونَهُنَّ وَلٰكِنْ لَا
تُوَاعِدُوهُنَّ سِرًّا اِلَّا اَنْ تَقُولُوا قَوْلًا مَعْرُوفًا وَلَا تَعْزِمُوا عُقْدَةَ
النِّكَاحِ حَتّٰى يَبْلُغَ الْكِتَابُ اَجَلَهُ وَاعْلَمُوا اَنَّ اللّٰهَ يَعْلَمُ مَا فِى
اَنْفُسِكُمْ فَاحْذَرُوهُ وَاعْلَمُوا اَنَّ اللّٰهَ غَفُورٌ حَلِيمٌ ﴿٢٣٥﴾
لَا جُنَاحَ عَلَيْكُمْ اِنْ طَلَّقْتُمُ النِّسَاءَ مَا لَمْ تَمَسُّوهُنَّ اَوْ
تَفْرِضُوا لَهُنَّ فَرِيضَةً وَمَتِّعُوهُنَّ عَلَى الْمُوسِعِ قَدَرُهُ وَعَلَى
الْمُقْتِرِ قَدَرُهُ مَتَاعًا بِالْمَعْرُوفِ حَقًّا عَلَى الْمُحْسِنِينَ ﴿٢٣٦﴾
وَاِنْ طَلَّقْتُمُوهُنَّ مِنْ قَبْلِ اَنْ تَمَسُّوهُنَّ وَقَدْ فَرَضْتُمْ لَهُنَّ
فَرِيضَةً فَنِصْفُ مَا فَرَضْتُمْ اِلَّا اَنْ يَعْفُونَ اَوْ يَعْفُوَا الَّذِى
بِيَدِهِ عُقْدَةُ النِّكَاحِ وَاَنْ تَعْفُوا اَقْرَبُ لِلتَّقْوٰى
وَلَا تَنْسَوُا الْفَضْلَ بَيْنَكُمْ اِنَّ اللّٰهَ بِمَا تَعْمَلُونَ بَصِيرٌ ﴿٢٣٧﴾

**234**- Ew ên ku ji we dimirin û li pey xwe jinan dihêlin, ew (jin) dê bi xwe (di mala mêrê xwe de) çar meh û deh rojan bisekinin (xwe naxemilînin û nazewicin). Çaxê dema xwe ya xwegirtinê temam kirin, li ser we (weliyê jinan) tu guneh nîn e ku hûn destûra wan bidin ku ew li gorî adetê karê xwe bikin (da bêne xwestin û bizewicin). Xwedê Teala ji karên ku hûn dikin agahdar e.

Ev hukmê ku ayetê eşkere kiriye ji bo jina ku rewşa wê nediyar e ka bi hemle ye yan na! Lê iddeta ya bi hemle, bi çêbûna zarokê bi dawî dibe.

**235**- (Gelî mêran! ) Der heqê zewaca jinên jinebî de tu guneh li ser we tune ye ku hûn (beriya iddeta wan temam bibe) daxwaza xwe di ber wan re biavêjin, yan jî di dilê xwe de bihêlin. Xwedê Teala zanî ku hûn ê ji wan re bibêjin (ku dilê we li ser wan e), lê belê ji bilî ku ji wan re gotineke biusûl bibêjin, soza hevdîtineke bi dizî nedin wan. Heta ku iddetê wan temam nebe wan mehr mekin. Bizanin ku bêguman Xwedê Teala bi ya di dilên we de dizane. Naxwe jê bitirsin û agahdar bin ku bêguman Xwedê gunehjêbir e, berbihêr e.

Gava mêrê jinekê bimire divê ew jin çar meh û deh rojan çavnêriyê bike, nezewice. Piştî vê dema çavnêriyê heke kifş bibe ku va ye ne ducanî ye, hingê dikare mêr bike. Heke di vî mudeyî de kifş be ku ew bi hemle ye (ducanî ye), hingê divê bisekine heya ku biwelide û piştî ku welidî êdî dikare mêr bike û mafê tu kesî jî nîn e ku jê re bibe asteng.

**236**- Eger (piştî ku we ew mehr kirin) hîn ku we dest nedabe wan an jî we mehra wan diyar nekiribe, hûn jinan berdin, li ser we ne pêwîst e ku hûn mehrê bidin wan. Di vê rewşê de (bi tiştekî ji malê xwe) wan dilxweş bikin. Bila kesê destfireh (dewlemend) li gorî halê xwe û kesê desteng (ê xizan) jî li gorî halê xwe, dayîneke Xweda pê razî, bide wan. Ev qenciya bi rindî di stûyê mirovên qenc de deynekî misoger e.

**237**- Eger beriya ku hûn biçine nivîna wan hûn wan berdin û bi rastî jî we mehra wan diyar kiribe, wê çaxê hûn ê nîvê mehra diyarkirî bidin wan. Lê belê eger jin li mehra xwe bibore, yan jî ew mêrê ku peymana mehrê di dest wî de ye lê bibore (ku tevahiyê mehrê bide jinê) ew tiştekî din e. Eger hûn lê biborin, ew bêhtir nêzî teqwayê ye. (Gelî muminan!) Di navbera xwe de qencîkariyê ji bîr mekin! Bêguman Xwedê bi ya ku hûn dikin bîner e.

حَافِظُوا عَلَى الصَّلَوَاتِ وَالصَّلٰوةِ الْوُسْطٰى وَقُومُوا
لِلّٰهِ قَانِتِينَ ﴿٢٣٨﴾ فَاِنْ خِفْتُمْ فَرِجَالاً اَوْ رُكْبَانًا فَاِذَٓا اَمِنْتُمْ
فَاذْكُرُوا اللّٰهَ كَمَا عَلَّمَكُمْ مَا لَمْ تَكُونُوا تَعْلَمُونَ ﴿٢٣٩﴾
وَالَّذِينَ يُتَوَفَّوْنَ مِنْكُمْ وَيَذَرُونَ اَزْوَاجًا وَصِيَّةً
لِاَزْوَاجِهِمْ مَتَاعًا اِلَى الْحَوْلِ غَيْرَ اِخْرَاجٍ فَاِنْ خَرَجْنَ
فَلَا جُنَاحَ عَلَيْكُمْ فِى مَا فَعَلْنَ فِٓى اَنْفُسِهِنَّ مِنْ
مَعْرُوفٍ وَاللّٰهُ عَزِيزٌ حَكِيمٌ ﴿٢٤٠﴾ وَلِلْمُطَلَّقَاتِ مَتَاعٌ
بِالْمَعْرُوفِ حَقًّا عَلَى الْمُتَّقِينَ ﴿٢٤١﴾ كَذٰلِكَ يُبَيِّنُ
اللّٰهُ لَكُمْ اٰيَاتِهِ لَعَلَّكُمْ تَعْقِلُونَ ﴿٢٤٢﴾ اَلَمْ تَرَ اِلَى الَّذِينَ
خَرَجُوا مِنْ دِيَارِهِمْ وَهُمْ اُلُوفٌ حَذَرَ الْمَوْتِ فَقَالَ
لَهُمُ اللّٰهُ مُوتُوا ثُمَّ اَحْيَاهُمْ اِنَّ اللّٰهَ لَذُو فَضْلٍ عَلَى
النَّاسِ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَ النَّاسِ لَا يَشْكُرُونَ ﴿٢٤٣﴾ وَقَاتِلُوا
فِى سَبِيلِ اللّٰهِ وَاعْلَمُوا اَنَّ اللّٰهَ سَمِيعٌ عَلِيمٌ ﴿٢٤٤﴾
مَنْ ذَا الَّذِى يُقْرِضُ اللّٰهَ قَرْضًا حَسَنًا فَيُضَاعِفَهُ لَهُ
اَضْعَافًا كَثِيرَةً وَاللّٰهُ يَقْبِضُ وَيَبْسُطُ وَاِلَيْهِ تُرْجَعُونَ ﴿٢٤٥﴾



**238**- (Gelî mislimanan!) Li ser kirina pênc ferz nimêjan berdewam bin û (nexasim) li ser nimêja navîn (nimêja esrê) miqate bin. Bi guhdarî û bi tirs bi ber Xwedê Teala ve rabin piyan.

**239**- Eger hûn (ji neyarê xwe) bitirsin, peya yan jî siwar nimêjê bikin. Dema hûn (ji tirsê) ewle bûn, her wekî ku Xwedê Teala ya ku berê we nedizanî bi we daye zanîn, wisa jê re nimêj bikin.

**240**- Ji we, ew mêrên ku bimirin û li dûv xwe jinebiyan bihêlin, bila wesiyet bikin ku heta salekê ew jinên wan di malên wan de bikarin jiyana xwe bidomînin û bi qencî ji mîrasa wan bixwin. Êdî eger ew bi xwe ji mala mêrê xwe derkevin, hingê ji ber wan tiştên ku ew bi rindî ji bo xwe bikin tu guneh ji we re nîn e. Xwedê serdest e, hekîm e.

**241**- Ji bo jinên ku hatine berdan, heqê wan e ku bi rindî (bi cil û bergan, xwarin û pêxwarinê) bên havildarkirin. Ev yek wezîfe ye li ser wan ên ku hay ji ferman û qedexeyên Xwedê Teala hene.

**242**- Bi vî awayî Xwedê Teala ayetên xwe ji we re eşkere dike da ku hûn bifikirin û heqîqetê têbigihîjin.

**243**- Ma te ew nedîtin, ew ên ku ji tirsa mirinê ji welatên xwe derketin hejmara wan bi hezaran bû? Xwedê Teala ji wan re got: "Bimirin" (ew jî mirin), piştre ew sax kirin. Bêguman Xwedê Teala li ser mirovan xwedîkerem e. Lê belê piraniya mirovan vê naşêkirînin.

Ev kesên ku ayeta pîroz behsa wan kiriye civateke Îsraîliyan e ku hukimdarê wan gaziya cîhadê li wan kiribû. Ew ji tirsa ku dê di şer de bên kuştin, reviyabûn. Vêca Xwedê ew heşt rojan mirî hiştin. Pişt re bi qebûlbûna duayê Hezqîl Pêxemberê wan, Xwedê ew dîsa sax kirin û ew heta demekê li jiyanê man. Îbnu Kesîr gotiye: Îbretek di vê rûdanê de heye ku tedbîr nikare ji bo qederê bibe asteng û ne bi bal Xwedê ve be, ji ber Xwedê tu star tune ye ku mirov xwe bide berê.

**244**- Di riya Xwedê de şer bikin û bizanin ku birastî Xwedê bihîzer e, zana ye.

**245**- Ma kî ye ew ê ku deynekî rind bide Xwedê (li ser feqîr û hejaran qenciyê bike), da ku Xweda jî wî deynî qat bi qat jê zêdetir lê vegerîne? Xwedê ye yê ku kêm û zêde dike û hûn ê her bi bal wî ve vegerin.

اَلَمْ تَرَ اِلَى الْمَلَاِ مِنْ بَن۪ٓى اِسْرَٓائ۪لَ مِنْ بَعْدِ مُوسٰىۢ
اِذْ قَالُوا لِنَبِيٍّ لَهُمُ ابْعَثْ لَنَا مَلِكًا نُقَاتِلْ ف۪ى سَب۪يلِ
اللّٰهِ ۜ قَالَ هَلْ عَسَيْتُمْ اِنْ كُتِبَ عَلَيْكُمُ الْقِتَالُ اَلَّا
تُقَاتِلُوا ۜ قَالُوا وَمَا لَنَٓا اَلَّا نُقَاتِلَ ف۪ى سَب۪يلِ اللّٰهِ وَقَدْ
اُخْرِجْنَا مِنْ دِيَارِنَا وَاَبْنَٓائِنَا ۜ فَلَمَّا كُتِبَ عَلَيْهِمُ الْقِتَالُ
تَوَلَّوْا اِلَّا قَل۪يلًا مِنْهُمْ ۜ وَاللّٰهُ عَل۪يمٌ بِالظَّالِم۪ينَ ٢٤٦
وَقَالَ لَهُمْ نَبِيُّهُمْ اِنَّ اللّٰهَ قَدْ بَعَثَ لَكُمْ طَالُوتَ
مَلِكًا ۜ قَالُٓوا اَنّٰى يَكُونُ لَهُ الْمُلْكُ عَلَيْنَا وَنَحْنُ اَحَقُّ
بِالْمُلْكِ مِنْهُ وَلَمْ يُؤْتَ سَعَةً مِنَ الْمَالِ ۜ قَالَ اِنَّ اللّٰهَ
اصْطَفٰيهُ عَلَيْكُمْ وَزَادَهُ بَسْطَةً فِى الْعِلْمِ وَالْجِسْمِ ۜ
وَاللّٰهُ يُؤْت۪ى مُلْكَهُ مَنْ يَشَٓاءُ ۜ وَاللّٰهُ وَاسِعٌ عَل۪يمٌ
٢٤٧ وَقَالَ لَهُمْ نَبِيُّهُمْ اِنَّ اٰيَةَ مُلْكِه۪ٓ اَنْ يَأْتِيَكُمُ
التَّابُوتُ ف۪يهِ سَك۪ينَةٌ مِنْ رَبِّكُمْ وَبَقِيَّةٌ مِمَّا تَرَكَ
اٰلُ مُوسٰى وَاٰلُ هٰرُونَ تَحْمِلُهُ الْمَلٰٓئِكَةُ ۜ
اِنَّ ف۪ى ذٰلِكَ لَاٰيَةً لَكُمْ اِنْ كُنْتُمْ مُؤْمِن۪ينَ ٢٤٨

**246**- Ma te giregirên îsraîliyan piştî wefata Mûsa nedîtin ku çi kirin?! Dema wan ji pêxemberê xwe (Şemwîl) re got: "Ji me re hukimdarekî bişîne (bila bibe mezinê me) da ku em di riya Xwedê Teala de şer bikin." (Şemwîl) ji wan re got: "(Ez ditirsim ku) eger şer li ser we ferz bibe ku hûn dê şer nekin!" Gotin: "Wekî ku em ji welatê xwe hatine deranîn û ji zarokên xwe hatine dûrkirin, ma çi li me bûye ku em dê di riya Xwedê Teala de şer nekin?" Lê çi dema şer li ser wan hate ferzkirin, ji kêm kesan pê ve, yên din pişta xwe dane wan û vegeriyan. Xwedê Teala bi stemkaran dizane.

Bi navê **"Emalîqe"** milletek li navbera Misr û Filistînê dijiya û wan êrîş anî ser îsraîliyan, ew perîşan kirin û ji welatên wan kirin der. Navê mezinê Emalîqe Calût bû. Pêxamberê wan, bi navê "Talût" zilamek ji nav xelkê bijart û ew kir serdarê wan. Êdî wan ev yek rexne kir. Ev ayetên ku bên bi kurtî vê qiseyê rave dikin.

**247**- Pêxemberê wan ji wan re got: "Bêguman Xwedê Talût wekî hukimdar ji we re şandiye." Gotin: Digel ku em bêhtir layiqê hukimdariyê ne û digel ku ji aliyê mal û zengîniyê ve tu derfetên fireh jî ji bo wî nehatiye dayîn, dê çawa ew li ser me bibe hukimdar?! Pêxemberê wan got: "Bêguman Xwedê Teala ew li ser we bijartiye û Xweda zanîneke zêde û gewdeyekî mezin dayê. Xwedê kê bivê fermandariya xwe dide wî. Xwedê bi qenciya xwe berfireh e, zana ye."

Talût, ne ji malbateke navdar bû, mirovekî rêncber û debaxkar bû. Lêbelê ji aliyê zanîn, bedewbûn û rewiştî ve ew ji îsraîliyan tevan zanatir, exlaqxweştir û bedewtir bû.

**248**- Pêxemberê wan ji wan re got: "Bêguman nîşana hukimdariya wî ew e ku dê sindoq (ya ku Tewrat tê de ye) ji we re bê. Ji cem Xwedayê we, ji bo we dilxweşî û bermahiyeke hêja ji binemala Mûsa û Harûnî tê de ne, firîşte wê hildigrin. Bêguman di vê de, ji bo we nîşan hene, eger birastî hûn xwedanbawer bin.

Li gorî rîwayetan **Tabût**, sindoqek e. Mûsa di şeran de ew li pêşiya artêşê datanî. Vêca bi xêra wê aramî û sergiranî diket dilê leşkerên wî. Lêbelê çi gava cihû lawaz û bêhêz bûn, Calûtî ew tabût ji wan stand. Îbnû Ebbas gotiye: Melayîketan ew Tabût di navbera asîman û erdê de hildigirtin, dianîn û li ber Talûtî datanîn û xelkê jî li vê mûcîzeyê dinêrî.

فَلَمَّا فَصَلَ طَالُوتُ بِالْجُنُودِ قَالَ اِنَّ اللّٰهَ مُبْتَلِيكُمْ
بِنَهَرٍ فَمَنْ شَرِبَ مِنْهُ فَلَيْسَ مِنِّي وَمَنْ لَمْ يَطْعَمْهُ
فَاِنَّهُ مِنِّي اِلَّا مَنِ اغْتَرَفَ غُرْفَةً بِيَدِهِ فَشَرِبُوا مِنْهُ
اِلَّا قَلِيلاً مِنْهُمْ فَلَمَّا جَاوَزَهُ هُوَ وَالَّذِينَ اٰمَنُوا
مَعَهُ قَالُوا لَا طَاقَةَ لَنَا الْيَوْمَ بِجَالُوتَ وَجُنُودِهِ
قَالَ الَّذِينَ يَظُنُّونَ اَنَّهُمْ مُلَاقُوا اللّٰهِ كَمْ مِنْ فِئَةٍ
قَلِيلَةٍ غَلَبَتْ فِئَةً كَثِيرَةً بِاِذْنِ اللّٰهِ وَاللّٰهُ مَعَ
الصَّابِرِينَ ﴿٢٤٩﴾ وَلَمَّا بَرَزُوا لِجَالُوتَ وَجُنُودِهِ قَالُوا
رَبَّنَا اَفْرِغْ عَلَيْنَا صَبْراً وَثَبِّتْ اَقْدَامَنَا وَانْصُرْنَا
عَلَى الْقَوْمِ الْكَافِرِينَ ﴿٢٥٠﴾ فَهَزَمُوهُمْ بِاِذْنِ اللّٰهِ
وَقَتَلَ دَاوُدُ جَالُوتَ وَاٰتٰيهُ اللّٰهُ الْمُلْكَ وَالْحِكْمَةَ
وَعَلَّمَهُ مِمَّا يَشَاءُ وَلَوْلَا دَفْعُ اللّٰهِ النَّاسَ
بَعْضَهُمْ بِبَعْضٍ لَفَسَدَتِ الْاَرْضُ وَلٰكِنَّ اللّٰهَ
ذُو فَضْلٍ عَلَى الْعَالَمِينَ ﴿٢٥١﴾ تِلْكَ اٰيَاتُ اللّٰهِ
نَتْلُوهَا عَلَيْكَ بِالْحَقِّ وَاِنَّكَ لَمِنَ الْمُرْسَلِينَ ﴿٢٥٢﴾
تِلْكَ

**249-** Çi dema Talût (ji bo cîhadê) bi leşkeran re (ji Qudsê) derket (ji leşkerên xwe re) got: "Bizanin ku dê Xwedê Teala we bi çemekî biceribîne. Êdî kî ji wî çemî (avê) vexwe, ew ne hevalê min e, kî jê venexwe birastî ew hevalê min e. Lê kesê misteke jê vexwe ew xem nake." Vêca ji wan, ji bilî kêm kesan, tevekan ji wî çemî av vexwar. Çi dema Talût û yên ku pê re bawerî anîbûn ji çemî derbas bûn, piraniya wan gotin: "Îro li hemberî Calût û leşkerên wî tu hêza me tune ye." Ew ên ku bawer dikirin ku ew dê herin ber destê Xwedê ji hev re gotin: "Gelek caran civatên hindik bi destûra Xwedê zora civatên pir biriye û Xwedê digel sebirkêşan e."

Sebr, mana wê a ferhengî; navê giyayekî pir tehl e. Di îstîlaha dînî de; xweragirtina li ser îbadetan, li ser nekirina gunehan û xweragirtina li hember karesat û tengezariyan e. Bi sedema ku xweragirtin gelekî zehmet û tehl e, jê re sabir gotine. Lewra yê ku sebrê dikêşê tahliyê diqurpênê. Vêca ji ber ku sebir, di têkoşîna li hember kufr û zulmê de û ji bo serkevtin û gihiştina armancê pir girîng û pêdivî ye, Xwedê di Qur'ana Pîroz de nêzîkî 90 (not) ayetî de behsa sebrê kiriye, pesnê sabiran /sebirkêşan daye û bi sebrê emrê me kiriye.

***Sebir Sê Beş e:*** a) Li ser kirina îbadetî ji bo Xwedê divê mirov sebrê bikêşe da ku karibe ji hemû rexan ve û bi awayekî bêqusûr taetê Rebbê xwe ji stoyê xwe bike. b) Li hemberê wan kar û barên ku Xwedê ew heramkirine, da ku karibe nefsa xwe -ya çilek û ya ku bi neqenciyê emir dike- ji wan vekêşe û hevsarê wê bixe destê xwe û ji dest xwe hîç bernede. c) Li hember qeder û qezaên Xwedê ne, ew ên ku cansoj û xemnak in.

Divê em bidin zanîn ku; peyvên "xweragirtin û bêhnfereh" têra peyva sebrê nakin. Lewra ragirtin ji sebrê zêdetir bi mebesta teselî, hedan û îstiqrar e. bêhnferehî jî bi mebesta helîmbûn e. Ya baş ev e ku; mirov di şûna wê de peyva sebrê û sebirkêş bi kar bîne.

**250-** Çi dema li qada şer derketin pêşberî Calût û leşkerên wî, gotin: "Xwedayê me! Sebrê li ser me birijîne. Lingên me bi cih bike û li hemberî gelê kafir arîkariya me bike."

**251-** Êdî bi destûra Xwedê ew şikandin. Dawud, Calût kuşt. Xwedê Teala hukimdarî û hîkmet da Dawud û ji ilmên ku (Xwedê Teala) dixwest pê dan zanîn. Eger Xwedê hin mirov neparastina û hin jê neanîna rê, helbet dê pergala ser erdê xerab bibûya. Lê belê Xwedê ji bo temamê alemê xwediyê kerema pir e.

**252-** (Ya Muhemmed!) Ew (ên ku hatin gotin) ayetên Xwedê Teala ne, em wan bi heqiyê ji te re dibêjin. Bêguman tu ji pêxemberan î.

تِلْكَ الرُّسُلُ فَضَّلْنَا بَعْضَهُمْ عَلٰى بَعْضٍ مِنْهُمْ مَنْ كَلَّمَ اللّٰهُ
وَرَفَعَ بَعْضَهُمْ دَرَجَاتٍ وَاٰتَيْنَا عِيسَى ابْنَ مَرْيَمَ الْبَيِّنَاتِ
وَاَيَّدْنَاهُ بِرُوحِ الْقُدُسِ وَلَوْ شَاءَ اللّٰهُ مَا اقْتَتَلَ الَّذِينَ مِنْ
بَعْدِهِمْ مِنْ بَعْدِ مَا جَاءَتْهُمُ الْبَيِّنَاتُ وَلٰكِنِ اخْتَلَفُوا فَمِنْهُمْ
مَنْ اٰمَنَ وَمِنْهُمْ مَنْ كَفَرَ وَلَوْ شَاءَ اللّٰهُ مَا اقْتَتَلُوا وَلٰكِنَّ
اللّٰهَ يَفْعَلُ مَا يُرِيدُ ﴿٢٥٣﴾ يَا اَيُّهَا الَّذِينَ اٰمَنُوا اَنْفِقُوا مِمَّا
رَزَقْنَاكُمْ مِنْ قَبْلِ اَنْ يَأْتِيَ يَوْمٌ لَا بَيْعٌ فِيهِ وَلَا خُلَّةٌ وَلَا
شَفَاعَةٌ وَالْكَافِرُونَ هُمُ الظَّالِمُونَ ﴿٢٥٤﴾ اَللّٰهُ لَا اِلٰهَ اِلَّا هُوَ اَلْحَيُّ
الْقَيُّومُ لَا تَأْخُذُهُ سِنَةٌ وَلَا نَوْمٌ لَهُ مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَمَا
فِي الْاَرْضِ مَنْ ذَا الَّذِي يَشْفَعُ عِنْدَهُ اِلَّا بِاِذْنِهِ يَعْلَمُ مَا بَيْنَ
اَيْدِيهِمْ وَمَا خَلْفَهُمْ وَلَا يُحِيطُونَ بِشَيْءٍ مِنْ عِلْمِهِ اِلَّا بِمَا
شَاءَ وَسِعَ كُرْسِيُّهُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ وَلَا يَؤُدُهُ حِفْظُهُمَا
وَهُوَ الْعَلِيُّ الْعَظِيمُ ﴿٢٥٥﴾ لَا اِكْرَاهَ فِي الدِّينِ قَدْ تَبَيَّنَ الرُّشْدُ مِنَ
الْغَيِّ فَمَنْ يَكْفُرْ بِالطَّاغُوتِ وَيُؤْمِنْ بِاللّٰهِ فَقَدِ اسْتَمْسَكَ
بِالْعُرْوَةِ الْوُثْقٰى لَا انْفِصَامَ لَهَا وَاللّٰهُ سَمِيعٌ عَلِيمٌ ﴿٢٥٦﴾

**253**- Ew pêxember in ku me hinek ji wan di ser ên din re girtine. Hin ji wan hene ku Xwedê bi wan re peyiviye û dereceyên hinekan jî bilind kirine. Me nîşanên eşkere jî dane Îsayê kurê Meryemê û me ew bi Canê Pak (Cebraîl) daye destekkirin. Eger Xwedê bixwesta, ew ên ku piştî delîlên eşkere ji wan re hatin, dê piştî pêxemberan şerê hev nekirbûya. Lê belê ew bi hev ketin; hin ji wan îman anîn û hinekan jî înkar kir. Eger Xwedê bixwesta helbet wan şerê hev nedikir. Lê belê Xwedê her çi bivê (wê) dike.

**254**- Hey gelî yên ku bawerî anîne! Beriya ku ew roj bi ser we de bê ku tê de ne bazar ne dostanî û ne jî mehderî heye, ji rizqê ku me daye we (di riya Xwedê de) xerc bikin. Yên kafir, ew stemkar bi xwe ne.

**255**- Allah Teala ye, (yê ku) ji Wî pê ve tu xweda nîn in, her sax e, her ragirê heyînê ye. Ne xew wî digire ne jî hênijîn. Her jê re ye tiştê li asîmanan û yê li erdê. Ji bilî yê ku wî destûr dabe ew kî ye (ku bêdestûra wî) li nik wî mehderiyê bike? Tiştê mirovan kiriye û yê ku dê hê bikin ew pê dizane. Ji ya ku wî xwestiye pê ve, kes bi tiştekî ji zanîna wî nizane. Kursiyê wî erd û esman di xwe de vehewandine. Parastina wan pê giran nayê û her ew e yê raser, ê mezin.

Qîmetê Ayetul-Kursiyê pir bilind û mezin e. Ji Pêxember (s) hatiye rîwayetkirin ku di Qur'anê de ew ji hemû ayetan qedirbilindtir û mezintir e. Îsmê E'zem (Navê herî mezin ê Xwedê) di vê ayetê de ye. "Navê Xwedê yê herî mezin yê ku dema bi wî were gazîkirin, bersivê bidiyê di sê cihan de ye: Sûreyê Beqere, Alî Îmran û Taha".

**256**- Di (têxistina) dîn de zorî nîn e! Bi rastî serwextî (ya di dîn de) ji rêşaşiyê hatiye kifşkirin. Naxwe kî ku taxût înkar bike û bi Xwedê Teala baweriyê bîne, teqez wî xwe bi qulpa saxlem (û asê) girtiye ku qetandin jê re nîn e. Xwedê Teala bihîzer e, zana ye.

Ev ayeta pîroz bingeheke girîng ji me re eşkere dike. Di nav xelkê de -misilman û nemisilman- baweriyek xelet heye. Li gorî fikr û ramana wan îslam baweriya xwe bi darê zorê bi xelkê dide qebûlkirin. Xeletiyên ku li ser navê îslamê bi destên hin musilmanên nezan xuya dibe, ev jî dibe arîkarî ji bo wan. Ya ku ew difikirin û dibêjin ne rast e. Lewra; ayet bi eşkere û zelal dibêje: "Di têxistina dîn de kotekî tun e."

اَللّٰهُ وَلِيُّ الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا يُخْرِجُهُمْ مِنَ الظُّلُمَاتِ اِلَى النُّورِ
وَالَّذ۪ينَ كَفَرُٓوا اَوْلِيَٓاؤُ۬هُمُ الطَّاغُوتُ يُخْرِجُونَهُمْ مِنَ
النُّورِ اِلَى الظُّلُمَاتِ اُو۬لٰٓئِكَ اَصْحَابُ النَّارِ هُمْ ف۪يهَا
خَالِدُونَ ﴿٢٥٧﴾ اَلَمْ تَرَ اِلَى الَّذ۪ي حَٓاجَّ اِبْرٰه۪يمَ ف۪ي رَبِّه۪ٓ
اَنْ اٰتٰيهُ اللّٰهُ الْمُلْكَۢ اِذْ قَالَ اِبْرٰه۪يمُ رَبِّيَ الَّذ۪ي يُحْي۪
وَيُم۪يتُ قَالَ اَنَا۬ اُحْي۪ وَاُم۪يتُ قَالَ اِبْرٰه۪يمُ فَاِنَّ اللّٰهَ يَأْت۪ي
بِالشَّمْسِ مِنَ الْمَشْرِقِ فَأْتِ بِهَا مِنَ الْمَغْرِبِ فَبُهِتَ
الَّذ۪ي كَفَرَ وَاللّٰهُ لَا يَهْدِي الْقَوْمَ الظَّالِم۪ينَ ﴿٢٥٨﴾ اَوْ
كَالَّذ۪ي مَرَّ عَلٰى قَرْيَةٍ وَهِيَ خَاوِيَةٌ عَلٰى عُرُوشِهَا قَالَ
اَنّٰى يُحْي۪ هٰذِهِ اللّٰهُ بَعْدَ مَوْتِهَا فَاَمَاتَهُ اللّٰهُ مِائَةَ عَامٍ ثُمَّ
بَعَثَهُ قَالَ كَمْ لَبِثْتَ قَالَ لَبِثْتُ يَوْمًا اَوْ بَعْضَ يَوْمٍ قَالَ
بَلْ لَبِثْتَ مِائَةَ عَامٍ فَانْظُرْ اِلٰى طَعَامِكَ وَشَرَابِكَ لَمْ
يَتَسَنَّهْ وَانْظُرْ اِلٰى حِمَارِكَ وَلِنَجْعَلَكَ اٰيَةً لِلنَّاسِ وَانْظُرْ
اِلَى الْعِظَامِ كَيْفَ نُنْشِزُهَا ثُمَّ نَكْسُوهَا لَحْمًا فَلَمَّا
تَبَيَّنَ لَهُ قَالَ اَعْلَمُ اَنَّ اللّٰهَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَد۪يرٌ ﴿٢٥٩﴾

وَاِذْ

**257**- Xwedê, dost û arîkarê wanên ku bawerî anîne. Wan ji tarîtiyên kufrê derdixîne bal ronahiya îmanê ve. Ew ên ku kafir in, dostên wan jî taxût e, wan ji ronahiya îslamê derdixîne bal tarîtiyên kufrê ve. Ha ew xelkê êgir in û yên heta hetayê lê bimînin.

**Taxût**, ew tişta ku mirov pê ji sînorê xwe derbas bibe, ew sînorê ku Xwedê ji me re daniye. Ev dibe ku îbadetkirin be yan şopmeşandin be yan îtaetkarî be. Naxwe taxûtê her qewmekî ew e, ku ji bilî Xwedê û resûlê wî, bi bal hineke din ve mehkeme bibin û hukmê wan qebûl bikin. Yan ji bilî Xwedê ji tiştne din re îbadet bikin yan jî bê delîl û destûr bi gotina wan bike, her çiqas ev li ser navê dîn be jî. Ew taxût, dibe ku şeytan be, pûtb e, xirabî be û arezûyên nefsê bin jî.

**258**- Ma te ew nedît, ji bo ku Xwedê milk û fermandarî dabûyê ku bi Îbrahîm re di heqê Xwedayê wî de nîqaş dikir? Wê demê Îbrahîm jê re got: “Xwedayê min ew e ku sax dike û dimirîne.” Wî jî got: “Ez jî sax dikim û dimirînim (vêca du mirov anîn, yek sax hişt yek jî kuşt). Îbrahîm got: “Bêguman Xwedê Teala rojê ji rojhilat ve tîne rojava, de heydê tu jî ji rojava bîne rojhilat.” Êdî yê kafir (ji ber vê gotinê bêdelîl û) behitî ma. Xwedê Teala stemkaran bi heqiyê qet serwext nake.

**259**- Yan jî ma te nedît ew ê ku di ber bajarekî re derbas bû ku banê wî bi ser dîwarên wî de herifîbûn û got: “Gelo Xwedê dê çawa piştî mirinê wan sax bike?!” Di cih de Xwedê Teala ew mirand, piştî sed salî dîsa ew sax kir û jê re got: “Tu çi qasî li vir mayî?” Wî jî got: “Ez rojekê mam an çend demên rojê.” Xwedê Teala jê re got: “Na, tu sed salî li vir mayî.” De ka li xwarin û vexwarina xwe binêre hê jî xera nebûye û de ka li kerê xwe jî binêre. Ji bo em te ji mirovan re bikin îbret, me sed salî tu li vir mirî hişt û dîsa tu sax kirî. De ka vêga jî li hestiyan (ên kerê xwe) binêre çawa em wan tînin ser hev û goşt li wan dikin.” Çi dema heq jê ve xuya bû, got: “Ez bi yeqînî dizanim ku bêşik Xwedê Teala li ser her tiştî qadir e.”

وَاِذْ قَالَ اِبْرٰهٖيمُ رَبِّ اَرِنٖى كَيْفَ تُحْيِ الْمَوْتٰى قَالَ اَوَلَمْ
تُؤْمِنْ قَالَ بَلٰى وَلٰكِنْ لِيَطْمَئِنَّ قَلْبٖى قَالَ فَخُذْ اَرْبَعَةً مِنَ
الطَّيْرِ فَصُرْهُنَّ اِلَيْكَ ثُمَّ اجْعَلْ عَلٰى كُلِّ جَبَلٍ مِنْهُنَّ
جُزْءًا ثُمَّ ادْعُهُنَّ يَأْتٖينَكَ سَعْيًا وَاعْلَمْ اَنَّ اللّٰهَ عَزٖيزٌ
حَكٖيمٌ ٢٦٠ مَثَلُ الَّذٖينَ يُنْفِقُونَ اَمْوَالَهُمْ فٖى سَبٖيلِ اللّٰهِ
كَمَثَلِ حَبَّةٍ اَنْبَتَتْ سَبْعَ سَنَابِلَ فٖى كُلِّ سُنْبُلَةٍ مِائَةُ حَبَّةٍ
وَاللّٰهُ يُضَاعِفُ لِمَنْ يَشَٓاءُ وَاللّٰهُ وَاسِعٌ عَلٖيمٌ ٢٦١ اَلَّذٖينَ
يُنْفِقُونَ اَمْوَالَهُمْ فٖى سَبٖيلِ اللّٰهِ ثُمَّ لَا يُتْبِعُونَ مَٓا اَنْفَقُوا
مَنًّا وَلَٓا اَذًى لَهُمْ اَجْرُهُمْ عِنْدَ رَبِّهِمْ وَلَا خَوْفٌ عَلَيْهِمْ
وَلَا هُمْ يَحْزَنُونَ ٢٦٢ قَوْلٌ مَعْرُوفٌ وَمَغْفِرَةٌ خَيْرٌ مِنْ
صَدَقَةٍ يَتْبَعُهَٓا اَذًى وَاللّٰهُ غَنِيٌّ حَلٖيمٌ ٢٦٣ يَٓا اَيُّهَا الَّذٖينَ
اٰمَنُوا لَا تُبْطِلُوا صَدَقَاتِكُمْ بِالْمَنِّ وَالْاَذٰى كَالَّذٖى يُنْفِقُ
مَالَهُ رِئَٓاءَ النَّاسِ وَلَا يُؤْمِنُ بِاللّٰهِ وَالْيَوْمِ الْاٰخِرِ فَمَثَلُهُ كَمَثَلِ
صَفْوَانٍ عَلَيْهِ تُرَابٌ فَاَصَابَهُ وَابِلٌ فَتَرَكَهُ صَلْدًا لَا يَقْدِرُونَ
عَلٰى شَيْءٍ مِمَّا كَسَبُوا وَاللّٰهُ لَا يَهْدِى الْقَوْمَ الْكَافِرٖينَ ٢٦٤

**260**- Erê ma te nedît, dema Îbrahîm jî ji Xwedayê xwe re got: "Xwedayê min! Nîşanî min bide ka tu çawa miriyan sax dikî" Xwedayê wî jê re got: "Ma tu bawer nakî (ku ez dikarim miriyan sax bikim)?" Got: "Belê! Ez bawer dikim. Lê belê ji bo ku dilê min bi temamî rihet bibe (min xwest bibînim!)." Vêca (Xwedê Teala) jê re got: "Naxwe çar balindeyan bigire, wan bîne cem xwe, paşê (wan bigurîne, parçe bike), her parçeyekî ji wan deyne serê çiyayekî, piştre wan gazî cem xwe bike, ew dê bi lez bêne cem te. Bizanibe ku bi rastî Xwedê Serdest e, Hekîm e.

Îbrahîm (a.s.) meraq kiribû ka Xwedê çawa dê canê mirî dîsa ruh berdiyê û sax bike. Ji ber vê yekê ji Xwedayê xwe xwestibû ku nîşanî wî bide. Wekî ku di ayeta pîroz de buhuriye, Xwedê bi nimûneyeke maddî bersiva wî daye. Lê belê awayê saxkirinê nîşanî wî nedaye û diyar nekiriye. Wekî ku di ayetên pîroz yên borî de jî derbas bû, ev nimûneyên ku ji pêxemberan re hatine ji bo wan mûcîze û naçarhêl in. Ya girîng ev e ku yeqîn me bawerî hebe ku Xwedê misoger dê hemû xwedî-rûhan vejîne -nemaze- dê însên sax bike û bikişîne ber hesabê. Dibe ku ev pirs bêne hişê me jî, bersiva wan di wan ayetan de hatine dayîn, divê em bawer bikin.

**261**- Rewşa wan ên ku malên xwe di riya Xwedê Teala da xerc dikin wekî rewşa libek tov e ku heft simbil jê hêşîn tên, di her simbilekî de jî sed lib hene. Xwedê Teala ji bo kesên ku bivê, qat bi qat zêde dide wan. Xwedê Teala (bi kerema xwe) berfereh e, zana ye.

**262**- Ew ên ku malên xwe di riya Xwedê Teala de didin û piştî dayînê jî minetê nekin û eziyetê nedin; ji bo wan (roja qiyametê) li cem Xwedayê wan xelat heye. Ji bo wan tirs nîn e û ew xemgîn jî nabin.

**263**- Gotineke xweş û lêborîn, ji dayîna xêreke ku li dûv wê êşandin hebe çêtir e. Xwedê Teala dewlemend e, berbihêr e.

**264**- Hey gelî yên ku bawerî anîn! Xêra sedeqeyên xwe bi minet û êşandinê pûç mekin. Wekî yê ku malê xwe bi riyakarî û rûmet dide, lê di rastiyê de bi Xwedê Teala û roja axretê bêbawer e. Vêca rewşa wî dişibe rewşa tehtekî ku li serê hinek ax heye, êdî baraneke gur lê bibare (axê ji serê bibe), wê rût û hilû bihêle. (Ev ên wisa) malên wan ji destê wan derdikeve, ji xêrên ku kirin nikarin tiştekî bi dest bixin. Xwedê Teala kafiran rasterê nake.

وَمَثَلُ الَّذِينَ يُنْفِقُونَ اَمْوَالَهُمُ ابْتِغَاءَ مَرْضَاتِ اللّٰهِ وَتَثْبِيتًا
مِنْ اَنْفُسِهِمْ كَمَثَلِ جَنَّةٍ بِرَبْوَةٍ اَصَابَهَا وَابِلٌ فَاٰتَتْ
اُكُلَهَا ضِعْفَيْنِ فَاِنْ لَمْ يُصِبْهَا وَابِلٌ فَطَلٌّ وَاللّٰهُ بِمَا
تَعْمَلُونَ بَصِيرٌ ﴿٢٦٥﴾ اَيَوَدُّ اَحَدُكُمْ اَنْ تَكُونَ لَهُ جَنَّةٌ
مِنْ نَخِيلٍ وَاَعْنَابٍ تَجْرِي مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ لَهُ فِيهَا
مِنْ كُلِّ الثَّمَرَاتِ وَاَصَابَهُ الْكِبَرُ وَلَهُ ذُرِّيَّةٌ ضُعَفَاءُ
فَاَصَابَهَا اِعْصَارٌ فِيهِ نَارٌ فَاحْتَرَقَتْ كَذٰلِكَ يُبَيِّنُ اللّٰهُ
لَكُمُ الْاٰيَاتِ لَعَلَّكُمْ تَتَفَكَّرُونَ ﴿٢٦٦﴾ يَا اَيُّهَا الَّذِينَ اٰمَنُوا
اَنْفِقُوا مِنْ طَيِّبَاتِ مَا كَسَبْتُمْ وَمِمَّا اَخْرَجْنَا لَكُمْ
مِنَ الْاَرْضِ وَلَا تَيَمَّمُوا الْخَبِيثَ مِنْهُ تُنْفِقُونَ وَلَسْتُمْ
بِاٰخِذِيهِ اِلَّا اَنْ تُغْمِضُوا فِيهِ وَاعْلَمُوا اَنَّ اللّٰهَ غَنِيٌّ
حَمِيدٌ ﴿٢٦٧﴾ اَلشَّيْطَانُ يَعِدُكُمُ الْفَقْرَ وَيَأْمُرُكُمْ بِالْفَحْشَاءِ
وَاللّٰهُ يَعِدُكُمْ مَغْفِرَةً مِنْهُ وَفَضْلًا وَاللّٰهُ وَاسِعٌ عَلِيمٌ
﴿٢٦٨﴾ يُؤْتِي الْحِكْمَةَ مَنْ يَشَاءُ وَمَنْ يُؤْتَ الْحِكْمَةَ
فَقَدْ اُوتِيَ خَيْرًا كَثِيرًا وَمَا يَذَّكَّرُ اِلَّا اُولُوا الْاَلْبَابِ ﴿٢٦٩﴾

وَمَا

**265**- Rewşa yên ku malên xwe ji bo rizaya Xwedê Teala û xurtkirina baweriya xwe didin, wekî rewşa bostanekî ye ku li serê girekî be, baraneke gur lê bibare û ew berê (fêkiyê) xwe du qat bide. Eger baraneke pir lê neyê jî xunavek lê were têrê dike. Xwedê Teala bi karên ku hûn dikin bîner e.

**266**- Erê ma yek ji we divê ku baxçeyekî wî ji darxurme û mêwan hebe, tê de rûbar bikêşin û ji her celebên mêweyan tê de hebin, (ji aliyekî ve jî) kalîtî wî lawaz bike, ji aliyê din ve jî zarokên wî yên jar hebin; vêca bahozek rabe ku tê de agir hebe, îcar (bostanê wî) bişewitîne! (Helbet tu kes vê naxwaze). Her wiha Xwedê Teala ayetên xwe ji we re eşkere dike da ku hûn bifikirin (ji wan ders û îbretê bigirin).

Wekî ku ayeta pîroz bi awayekî şêrîn û bedew rave kir, malê dinyayê, meqam, cih û rûmet fena bostanekî ye, ne diyar e ka kengê dê ji dest mirovî biçe. Pêwîst e mirov vê yekê hîç ji bîra neke!

**267**-Hey gelî yên ku bawerî anîne! Ji qezenca xwe ya pak û ji ya ku me ji we re ji erdê deraniye zekatê bidin. Ji bo xêrê berê xwe nedin yê bêxêr, ew ê ku eger ne ji şerma bê hûn bi xwe wernagirin. Bizanin, bêguman Xwedê Teala dewlemend e, hêjayê pesindayînê ye.

**268**- Şeytan bi xizaniyê we ditirsîne û bêemriyê (li hemberî Xweda) li we ferman dike. Xwedê Teala jî ji nik xwe soza lêborîn û zêdedanê dide we. Xwedê Teala (bi qenciya xwe) berfireh e, zana ye.

**269**- Ellah Teala, kê bivê hîkmetê dide wî û ji kê re hîkmet bê dayîn, bi rastî xêreke pir jê re hatiye dayîn. Ji hişmendan pê ve tu kes jê şîretê wernagire.

**Hikmet** (karbinecihî), ew xebardan yan jî ew xebata di cihê xwe de ne kêm be ne jî zêde. Wesfek ji yê Xwedê hekîm e. Kelamê wî jî muhkem e, ji her kêmasî û zêdeyiyê bilind û dûr e. Mebest bi yên ku pêşîn ji bo wan hikmet hatiye dayîn pêxember in, lewra ew ne ji kîsê xwe xeber didin belkî ew bi wehyeke ji cem Xwedê xeber didin. Dûv re jî ew alimên ku bi ilmê xwe emel dikin, lewra ew jî ji Qur'an û sunnetê xeber didin.

وَمَٓا اَنْفَقْتُمْ مِنْ نَفَقَةٍ اَوْ نَذَرْتُمْ مِنْ نَذْرٍ فَاِنَّ اللّٰهَ
يَعْلَمُهُۜ وَمَا لِلظَّالِمِينَ مِنْ اَنْصَارٍ ﴿٢٧٠﴾ اِنْ تُبْدُوا
الصَّدَقَاتِ فَنِعِمَّا هِيَۚ وَاِنْ تُخْفُوهَا وَتُؤْتُوهَا الْفُقَرَٓاءَ
فَهُوَ خَيْرٌ لَكُمْۜ وَيُكَفِّرُ عَنْكُمْ مِنْ سَيِّـَٔاتِكُمْۜ وَاللّٰهُ
بِمَا تَعْمَلُونَ خَبِيرٌ ﴿٢٧١﴾ لَيْسَ عَلَيْكَ هُدٰيهُمْ
وَلٰكِنَّ اللّٰهَ يَهْدٖى مَنْ يَشَٓاءُۜ وَمَا تُنْفِقُوا مِنْ خَيْرٍ
فَلِاَنْفُسِكُمْۜ وَمَا تُنْفِقُونَ اِلَّا ابْتِغَٓاءَ وَجْهِ اللّٰهِۜ وَمَا
تُنْفِقُوا مِنْ خَيْرٍ يُوَفَّ اِلَيْكُمْ وَاَنْتُمْ لَا تُظْلَمُونَ
﴿٢٧٢﴾ لِلْفُقَرَٓاءِ الَّذٖينَ اُحْصِرُوا فٖى سَبٖيلِ اللّٰهِ لَا
يَسْتَطٖيعُونَ ضَرْبًا فِى الْاَرْضِۘ يَحْسَبُهُمُ الْجَاهِلُ
اَغْنِيَٓاءَ مِنَ التَّعَفُّفِۚ تَعْرِفُهُمْ بِسٖيمٰيهُمْۚ لَا يَسْـَٔلُونَ
النَّاسَ اِلْحَافًاۜ وَمَا تُنْفِقُوا مِنْ خَيْرٍ فَاِنَّ اللّٰهَ
بِهٖ عَلٖيمٌ ﴿٢٧٣﴾ اَلَّذٖينَ يُنْفِقُونَ اَمْوَالَهُمْ بِالَّيْلِ
وَالنَّهَارِ سِرًّا وَعَلَانِيَةً فَلَهُمْ اَجْرُهُمْ عِنْدَ
رَبِّهِمْۚ وَلَا خَوْفٌ عَلَيْهِمْ وَلَا هُمْ يَحْزَنُونَ ﴿٢٧٤﴾

حِزْبٌ ٢

**270-** Çi xerckirina ku hûn xerc bikin an çi nezra ku hûn bînin cih, muheqeq Xwedê Teala pê dizane. Ji bo stemkaran tu arîkar nîn in.

**271-** Eger hûn sedeqeyên xwe eşkere bidin, ew çiqas rind e û eger hûn veşêrin û bi dizî bidin xizanan, ew ji we re hîn çêtir e. (Bi vî karê rind) Xweda dê gunehên we bibexşîne û Xwedê Teala ji karên ku hûn dikin agahdar e.

**272-** (Ey pêxember!) Hîdayetkirina wan ne li ser te ye; belê Xwedê Teala kê bivê, riya rast nîşanî wî dide û hîdayet dike. Hûn her çi xêrê bidin, ew ji bo we ye (hûn ê feydeya wê bibînin) û hûn çi xêrê bidin bila bes ji bo Xweda be. Hûn bi qesta xêrê çi bidin (xelata wê) bêkêmasî dê bigihîje we û hîç neheqî li we nayê kirin.

Ji bo em rind maneya vê ayeta pîroz fêm bikin hêja ye ku em sebebê nizûla wê fêr bibin. Li gorî ku ji Seîdê kurê Cubeyr hatiye ragihandin, mislimanan sedeqe didan zimmiyan jî. Çi gava feqîrên mislimanan zêde bûn, vêca Pêxemberê Xwedê (s) ji wan re got: "Sedeqeyan bidin biradînên xwe bi tenê. Di vê mijarê de ev ayet "Hîdayeta wan ne li ser te ye" nazil bû. Vêca ayetê bi vî awayî sedeqe ji bo feqîrên ne misliman jî helal kir.

**273-** Bila hinek ji sedeqeyên we ji bo wan xizanan bin ku (ji bo cîhadê) xwe dane riya Xwedê Teala û nikarin (ji bo bazirganiyê) li ser erdê bigerin. Yê ku bi rewşa wan nizane, ji ber pakdêriya (nexwestina) wan dibêje qey ew dewlemend in. Tu wan bi rûdêmê wan nas dikî ku ew hewce ne û ne pir û ne hindik ji mirovan xwestekiyê nakin. Hûn di riya Xwedê de çi xerc bikin vêca bêguman Xwedê pê dizane.

**274-** Ew ên ku malên xwe bi şev û roj, bi dizî û eşkere didin, ji bo wan ji nik Xwedayê wan xelata wan heye û li ser wan tu tirs tun e û ew xemgîn jî nabin.

اَلَّذٖينَ يَأْكُلُونَ الرِّبٰوا لَا يَقُومُونَ اِلَّا كَمَا يَقُومُ الَّذٖى
يَتَخَبَّطُهُ الشَّيْطَانُ مِنَ الْمَسِّ ذٰلِكَ بِاَنَّهُمْ قَالُٓوا اِنَّمَا الْبَيْعُ
مِثْلُ الرِّبٰوا وَاَحَلَّ اللّٰهُ الْبَيْعَ وَحَرَّمَ الرِّبٰوا فَمَنْ جَٓاءَهُ
مَوْعِظَةٌ مِنْ رَبِّهٖ فَانْتَهٰى فَلَهُ مَا سَلَفَ وَاَمْرُهُٓ اِلَى اللّٰهِ وَمَنْ
عَادَ فَاُولٰٓئِكَ اَصْحَابُ النَّارِ هُمْ فٖيهَا خَالِدُونَ ٢٧٥
يَمْحَقُ اللّٰهُ الرِّبٰوا وَيُرْبِى الصَّدَقَاتِ وَاللّٰهُ لَا يُحِبُّ كُلَّ
كَفَّارٍ اَثٖيمٍ ٢٧٦ اِنَّ الَّذٖينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ
وَاَقَامُوا الصَّلٰوةَ وَاٰتَوُا الزَّكٰوةَ لَهُمْ اَجْرُهُمْ عِنْدَ رَبِّهِمْ
وَلَا خَوْفٌ عَلَيْهِمْ وَلَا هُمْ يَحْزَنُونَ ٢٧٧ يَٓا اَيُّهَا الَّذٖينَ
اٰمَنُوا اتَّقُوا اللّٰهَ وَذَرُوا مَا بَقِىَ مِنَ الرِّبٰٓوا اِنْ كُنْتُمْ مُؤْمِنٖينَ
٢٧٨ فَاِنْ لَمْ تَفْعَلُوا فَاْذَنُوا بِحَرْبٍ مِنَ اللّٰهِ وَرَسُولِهٖ وَاِنْ تُبْتُمْ
فَلَكُمْ رُؤُسُ اَمْوَالِكُمْ لَا تَظْلِمُونَ وَلَا تُظْلَمُونَ ٢٧٩ وَاِنْ
كَانَ ذُو عُسْرَةٍ فَنَظِرَةٌ اِلٰى مَيْسَرَةٍ وَاَنْ تَصَدَّقُوا خَيْرٌ لَكُمْ
اِنْ كُنْتُمْ تَعْلَمُونَ ٢٨٠ وَاتَّقُوا يَوْمًا تُرْجَعُونَ فٖيهِ اِلَى اللّٰهِ
ثُمَّ تُوَفّٰى كُلُّ نَفْسٍ مَا كَسَبَتْ وَهُمْ لَا يُظْلَمُونَ ٢٨١

يَٓا اَيُّهَا

**275**- Ew ên ku ribayê (selefê) dixwin, eynî mîna wan ên ku ji lêdana şeytên dîn bûbin (roja qiyametê ji tirbên xwe) radibin. Ev halê wan ji ber wê sedemê ye ku dibêjin kirîn û firotin jî her wekî selefê ye. Hal ev e ku Xwedê Teala kirîn û firotin helal kiriye û selef jî heram kiriye. Êdî ji vêga û pê de ji kê re, ji cem Xwedayê wî şîretek were û ew dev ji selefê berde, vêca tiştên berê bûne her jê re ne (yên berî heram bibe jê nayên standin) û karê wî spareyî Xwedê Teala ye. Kî dîsa li selefê vegere, ha ew ehlê êgir in û heta hetayê dê tê de bimînin.

**276**- Xwedê Teala selefê helak dike (wî malî ziyan dike, bereketê jê dibe) û sedeqeyan jî pir dike (bereketê dixe malên ku zekat û sedeqe jê bên dayîn). Xwedê Teala ji her nankorê gunehkar hez nake.

**277**- Bêguman ew ên ku bawerî anîn û karên rind kirin, bi duristî û berdewamî nimêj kirin û zekat dane, ji wan re, li nik perwerdegarê wan xelata wan heye û ne tirs li ser wan heye ne jî ew xemgîn dibin.

**278**- Hey gelî yên ku bawerî anîne! Ji Xwedê bitirsin û dev ji wê selefa mayî (ya li bal xelkê) berdin, eger bi rastî hûn xwedanbawer in.

**279**- Êdî eger hûn dev ji selefê bernedin bizanin ku ji aliyê Xwedê û pêxemberê wî ve li hemberî we şerekî dijwar heye. Eger hûn poşman bibin, jê vegerin, vêca sermiyanê we her ji we re ye; ne hûn zilmê bikin û bila li we jî zilm neyê kirin.

**280**- Eger (deyndar) destteng be, heta destfirehiyekê bila muhlet lê bê dayîn û ku hûn (lê biborin û wî deynî) sedeqe (yan jî zekat) bihesibînin, eger hûn zanibin (ev) ji bo we çêtir e.

**281**- Xwe ji (riswabûna) rojeke wisa biparêzin ku hûn tê de bi bal Xweda ve vedigerin. Paşê her kes ji bo kar û kiryarên wî dê hesab digel bê kirin û zilm li kesî nayê kirin (ne xêrên wan kêm dibin, ne jî guneh li ser wan zêde dibin).

يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُٓوا اِذَا تَدَايَنْتُمْ بِدَيْنٍ اِلٰٓى اَجَلٍ مُسَمًّى
فَاكْتُبُوهُۜ وَلْيَكْتُبْ بَيْنَكُمْ كَاتِبٌ بِالْعَدْلِۖ وَلَا يَأْبَ كَاتِبٌ
اَنْ يَكْتُبَ كَمَا عَلَّمَهُ اللّٰهُ فَلْيَكْتُبْۚ وَلْيُمْلِلِ الَّذ۪ي عَلَيْهِ
الْحَقُّ وَلْيَتَّقِ اللّٰهَ رَبَّهُ وَلَا يَبْخَسْ مِنْهُ شَيْـٔاًۜ فَاِنْ كَانَ
الَّذ۪ي عَلَيْهِ الْحَقُّ سَف۪يهاً اَوْ ضَع۪يفاً اَوْ لَا يَسْتَط۪يعُ
اَنْ يُمِلَّ هُوَ فَلْيُمْلِلْ وَلِيُّهُ بِالْعَدْلِۜ وَاسْتَشْهِدُوا شَه۪يدَيْنِ
مِنْ رِجَالِكُمْۚ فَاِنْ لَمْ يَكُونَا رَجُلَيْنِ فَرَجُلٌ وَامْرَاَتَانِ
مِمَّنْ تَرْضَوْنَ مِنَ الشُّهَدَٓاءِ اَنْ تَضِلَّ اِحْدٰيهُمَا فَتُذَكِّرَ
اِحْدٰيهُمَا الْاُخْرٰىۜ وَلَا يَأْبَ الشُّهَدَٓاءُ اِذَا مَا دُعُواۜ وَلَا
تَسْـَٔمُٓوا اَنْ تَكْتُبُوهُ صَغ۪يراً اَوْ كَب۪يراً اِلٰٓى اَجَلِه۪ۜ ذٰلِكُمْ
اَقْسَطُ عِنْدَ اللّٰهِ وَاَقْوَمُ لِلشَّهَادَةِ وَاَدْنٰٓى اَلَّا تَرْتَابُٓوا اِلَّٓا
اَنْ تَكُونَ تِجَارَةً حَاضِرَةً تُد۪يرُونَهَا بَيْنَكُمْ فَلَيْسَ عَلَيْكُمْ
جُنَاحٌ اَلَّا تَكْتُبُوهَاۜ وَاَشْهِدُٓوا اِذَا تَبَايَعْتُمْۖ وَلَا يُضَٓارَّ
كَاتِبٌ وَلَا شَه۪يدٌۜ وَاِنْ تَفْعَلُوا فَاِنَّهُ فُسُوقٌ بِكُمْۜ
وَاتَّقُوا اللّٰهَۜ وَيُعَلِّمُكُمُ اللّٰهُۜ وَاللّٰهُ بِكُلِّ شَيْءٍ عَل۪يمٌ ﴿٢٨٢﴾

**282**- Hey gelî yên ku bawerî anîn! Dema we tiştek heta demeke navlêkirî bi deyn da hev, êdî wê binivîsin. Bila nivîsyarek (katibek) bi wijdan di navbera we de binivîse û bila nivîsyarek wekî ku Xwedê Teala pê daye zanîn xwe ji nivîsandinê nede paş û bila (her tiştî wekî ku heye) binivîse. Bila deyndar jî deynê xwe bibêje û (bêkêmasî) bide nivîsandin û bila (der barê deynê xwe de) ji Xwedê Teala bitirse ku perwerdegarê wî ye. Êdî eger deyndar aqilsivik[1] be, yan lawaz[2] be, yan jî ew bi xwe nikaribe bide nivîsandin[3], bila weliyê[4] wî (ew ê jê berpirs) bi wijdan bide nivîsîn! Ji nav xwe du zilamên (misliman û biwijdan) bikin şahid. Eger du zilam peyda nebin bila zilamek û du jin şahid bin ji yên ku hûn ji wan razî, eger yek ji wan ji bîr bike da ku ya din di bîra wê bîne. Dema şahid (ji bo şahidiyê) hatin gazîkirin bila xwe nedin paş. Ji nivîsandina deyn -çi biçûk be, çi mezin be- bila sist nebin, heyanî bi dema wan a diyarkirî jî binivîsin. Ha ev reng li cem Xwedê Teala biedalettir e û ji bo şahidiyê xurttir e û ji bo ku hûn nekevin gumanê saxlemtir e. Lê belê eger bazara we dest bi dest be ku hûn di navbera xwe de bidin û bistînin, hingê tu guneh li ser we nîn e ku hûn wê nenivîsin. Dema we bi hev re kirîn û firotan kir jî bila zerara tu nivîsyarî û tu şahidî neyê kirin[5]. Eger hûn zerarê bidin yekî ji wan, bizanin ku ev ji we re jî xerabî ye. Hay ji hukm û fermanên Xwedê hebin. Xwedê bi we didê fêrkirin. Xwedê Teala bi her tiştî zana ye.

1 Gelekî pîr e, ji aqlê xwe ve kêm e, bêhiş e yan jî dîn e.
2 Lal e yan jî ziman nizane yan jî li wê derê ne hazir e
3 Ew nikare binivîse yan jî zaroke wê fehmê nake.
4 Welî, yê ku bi kar û barê wî bi rê ve dibe.
5 Ji mufessiran hinekan wisa ma'ne kirine; bila katib û şahid (bi pêekneanîna daxwazê) zerarê nedin.

وَاِنْ كُنْتُمْ عَلٰى سَفَرٍ وَلَمْ تَجِدُوا كَاتِبًا فَرِهَانٌ مَقْبُوضَةٌ
فَاِنْ اَمِنَ بَعْضُكُمْ بَعْضًا فَلْيُؤَدِّ الَّذِى اؤْتُمِنَ اَمَانَتَهُ وَلْيَتَّقِ
اللّٰهَ رَبَّهُ وَلَا تَكْتُمُوا الشَّهَادَةَ وَمَنْ يَكْتُمْهَا فَاِنَّهُ اٰثِمٌ
قَلْبُهُ وَاللّٰهُ بِمَا تَعْمَلُونَ عَلِيمٌ ﴿٢٨٣﴾ لِلّٰهِ مَا فِى السَّمٰوَاتِ
وَمَا فِى الْاَرْضِ وَاِنْ تُبْدُوا مَا فِى اَنْفُسِكُمْ اَوْ تُخْفُوهُ
يُحَاسِبْكُمْ بِهِ اللّٰهُ فَيَغْفِرُ لِمَنْ يَشَاءُ وَيُعَذِّبُ مَنْ يَشَاءُ
وَاللّٰهُ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ ﴿٢٨٤﴾ اٰمَنَ الرَّسُولُ بِمَا اُنْزِلَ
اِلَيْهِ مِنْ رَبِّهِ وَالْمُؤْمِنُونَ كُلٌّ اٰمَنَ بِاللّٰهِ وَمَلٰئِكَتِهِ وَكُتُبِهِ
وَرُسُلِهِ لَا نُفَرِّقُ بَيْنَ اَحَدٍ مِنْ رُسُلِهِ وَقَالُوا سَمِعْنَا
وَاَطَعْنَا غُفْرَانَكَ رَبَّنَا وَاِلَيْكَ الْمَصِيرُ ﴿٢٨٥﴾ لَا يُكَلِّفُ اللّٰهُ
نَفْسًا اِلَّا وُسْعَهَا لَهَا مَا كَسَبَتْ وَعَلَيْهَا مَا اكْتَسَبَتْ
رَبَّنَا لَا تُؤَاخِذْنَا اِنْ نَسِينَا اَوْ اَخْطَاْنَا رَبَّنَا وَلَا تَحْمِلْ
عَلَيْنَا اِصْرًا كَمَا حَمَلْتَهُ عَلَى الَّذِينَ مِنْ قَبْلِنَا رَبَّنَا
وَلَا تُحَمِّلْنَا مَا لَا طَاقَةَ لَنَا بِهِ وَاعْفُ عَنَّا وَاغْفِرْ لَنَا
وَارْحَمْنَا اَنْتَ مَوْلٰينَا فَانْصُرْنَا عَلَى الْقَوْمِ الْكَافِرِينَ ﴿٢٨٦﴾

سُورَةُ

**283**- Eger hûn rêwî bin û we tiştek deyn kir û we katibek jî nedît (ku binivîse, wê çaxê) gerewekê di şûna wî de radestî xwediyê deyn bikin. Êdî eger hûn li hev ewle bin (gerew ne pêwîst e), vêca bila ew ê ku eminî pê hatiye kirin spareyê li cem xwe bide (xwediyê wî) û bila ji Xwedayê xwe Ellah Teala bitirse. Şahidiyê veneşêrin. Kî şahidiyê veşêre, bila bizane ku dilê wî gunehkar e. Xwedê Teala bi karên ku hûn dikin zana ye.

**284**- Çi tiştên li erd û asîmanan hene her ên Xwedê ne. Eger hûn a di dilê xwe de eşkere bikin, yan jî hûn wê veşêrin, Xweda dê we jê berpirs bigire. Vêca Xwedê kê bivê li wî dibore û kê jî bivê dide ezabê. Xwedê li ser her tiştî qadir e.

**285**- Pêxember bi wehya ku ji cem Xwedayê wî jê re hatî bawerî anî. Mumînan hemuyan jî bi Xwedê Teala û bi firîşteyên Wî û bi kitêbên Wî û bi pêxemberên Wî bawerî anîn. (mumîn dibêjin:) Em cudahiyê naxine navbera tu yekî ji pêxemberên Wî (ku em bi hinekan baweriyê bînin û hinekan jî înkar bikin). Gotin: (Xwedayê me!) Me fermana te bihîst û em ji te re berdest bûn. Xwedayê me! Em lêborîna gunehên xwe ji te dixwazin û veger her bi bal te ve ye.

**286**- Xwedê Teala her kesî bes li gorî hêza wî, wî binbar dike, xêra ku bi dest xistiye her jê re ye û gunehên ku bi dest xwe ve anîne jî her di stûyê wî de ne. Xwedayê me! Eger em (fermanên te) ji bîr bikin an jî em (qedexeyên te) bi bêhemdî bi kar bînin, li me negire. Xwedayê me! Her wekî te barê giran li yên beriya me kirî, wisa li me bar neke. Xwedayê me! Barê ku em qet nikaribin hilgirin jî li me bar neke. Li kêmasiyên me bibore, me ji gunehan paqij bike û dilovaniya xwe li me bike. Xwediyê me her tu yî, êdî me li hember gelên kafir serdest bike.

Ji Ebdullah kurê Mes'ud hatiye riwayet kirin ku pêxember (s) wiha ferman kiriye: Di mi'racê de yek ji wan sê tiştên ku ji min re hatine dayîn; ji sûreyê Beqere her du ayetên dawî ne. (Muslim, Îman, 279) Di hedîsa pîroz de derheqî van ayetan de wiha hatiye gotin: "Ew kesê herdu ayetên dawiya sûreyê Beqere bixwîne û raze, ew besî wî ne" (Musned, 118). Derbarî fezîleta van ayetan de, li tefsîra Îbn Kesîr binêre.



## SÛREYÊ ALÎ ÎMRAN

Sûreyê Alî Îmran, li Medînê daketiye. 200 (du sed) ayet e. Sûreyê navê xwe ji ayeta 34-37'an girtiye ku di wan de behsa Malbata Îmran hatiye kirin.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn**

**1- Elîf. Lam. Mîm!**

Di bara herfên serê sûretan de agahî di serê Sûreyê Beqereyê de hatiye dayîn.

2- Ellah Teala, ew Xweda ye ku ji Wî pê ve tu mabûdê bi heqî tun in, ew e yê her û her sax (mayînde), ew e yê her û her rêveber û lihevragirê kaînatê (heyînê).

3- (Ya Muhemmed!) Xwedê bi heqî ji te re Qur'an şand ku ew kitêbên beriya xwe rast didêre, Tewrat û Încil jî (ji Mûsa û Îsa pêxember re) hinartin.

4- Ku ew (Tewrat û Incîl) berî vêga (berî Qur'anê) ji bo mirovan delîl û ronahî bûn. Xwedê kitêbên cudaker (ên ku heq û batilî ji hev diqetînin) jî hinartin. Bêguman ew ên ku ayetên Xwedê înkar dikin; ji wan re ezabekî dijwar heye. Xwedê Teala (di karê xwe de) serdest e û ( ji mandelkerê ayetên xwe re bi ezabdayînê) tolveker e.

5- Bêguman ne li asîmanan ne jî li erdê tiştek ji ber Xwedê Teala veşartî nîn e.

6- Xwedê ye, yê ku di malzarokan de çawa bixwaze wisa dirûv dide we. Ji wî pê ve tu Xweda nîn in. Ew 'ezîz e, hekîm e.

7- Ew e yê ku Qur'an (ey Muhemmed) bi ser te de şand, hin ji ayetên wê hene ku muhkem in (eşkere û zelal in) ku ew bingeha kitêbê ne û yên din jî muteşabih in (mexseda wan ne zelal û eşkere ye). Vêca herçî kesê ku di dilê wan de ji rastiyê averêbûn heye, ji bo derxistina fitnê (di baweriya bawermendan de) û da ku te'wîla ayetan (ji cem xwe ve) lê bînin, dikevin pey ayetên muteşabih. Hal ev e ku ji Xwedê Teala pê ve tu kes te'wîla (mexseda) wan nizane. Ew ên ku pispor in û di zanînê de kok berdane dibêjin: "Me bawerî bi tevî wê (muhkem û muteşabihê ji Qur'anê) anî. Gişt ji cem Xwedayê me ne." Tenê yên xwedanaqil ji vê hûreferqê ders digirin û fehm dikin.

8- (Ew ên zana û pispor wiha dua dikin:) Xwedayê me! Piştî ku Te em anîn ser riya rast dilê me jê venegerîne. Ji nik xwe rehmê li me bike. Em bawer in ku yê pir dayende û bexşende her Tu yî.

9- Xwedayê me! Tu yî, yê ku mirovan di rojeke wisa de li hev kom dike ku der heqê wê rojê de hîç guman tune ye. Bi rastî Xwedê Teala hîç civan şaş nake û ji soza xwe danagere.

إِنَّ الَّذِينَ كَفَرُوا لَنْ تُغْنِيَ عَنْهُمْ أَمْوَالُهُمْ وَلَا أَوْلَادُهُمْ
مِنَ اللَّهِ شَيْئًا وَأُولَٰئِكَ هُمْ وَقُودُ النَّارِ ﴿١٠﴾ كَدَأْبِ
آلِ فِرْعَوْنَ وَالَّذِينَ مِنْ قَبْلِهِمْ كَذَّبُوا بِآيَاتِنَا فَأَخَذَهُمُ
اللَّهُ بِذُنُوبِهِمْ وَاللَّهُ شَدِيدُ الْعِقَابِ ﴿١١﴾ قُلْ لِلَّذِينَ
كَفَرُوا سَتُغْلَبُونَ وَتُحْشَرُونَ إِلَىٰ جَهَنَّمَ وَبِئْسَ الْمِهَادُ
﴿١٢﴾ قَدْ كَانَ لَكُمْ آيَةٌ فِي فِئَتَيْنِ الْتَقَتَا فِئَةٌ تُقَاتِلُ فِي
سَبِيلِ اللَّهِ وَأُخْرَىٰ كَافِرَةٌ يَرَوْنَهُمْ مِثْلَيْهِمْ رَأْيَ الْعَيْنِ
وَاللَّهُ يُؤَيِّدُ بِنَصْرِهِ مَنْ يَشَاءُ إِنَّ فِي ذَٰلِكَ لَعِبْرَةً لِأُولِي
الْأَبْصَارِ ﴿١٣﴾ زُيِّنَ لِلنَّاسِ حُبُّ الشَّهَوَاتِ مِنَ النِّسَاءِ
وَالْبَنِينَ وَالْقَنَاطِيرِ الْمُقَنْطَرَةِ مِنَ الذَّهَبِ وَالْفِضَّةِ
وَالْخَيْلِ الْمُسَوَّمَةِ وَالْأَنْعَامِ وَالْحَرْثِ ذَٰلِكَ مَتَاعُ
الْحَيَاةِ الدُّنْيَا وَاللَّهُ عِنْدَهُ حُسْنُ الْمَآبِ ﴿١٤﴾ قُلْ
أَؤُنَبِّئُكُمْ بِخَيْرٍ مِنْ ذَٰلِكُمْ لِلَّذِينَ اتَّقَوْا عِنْدَ رَبِّهِمْ
جَنَّاتٌ تَجْرِي مِنْ تَحْتِهَا الْأَنْهَارُ خَالِدِينَ فِيهَا وَأَزْوَاجٌ
مُطَهَّرَةٌ وَرِضْوَانٌ مِنَ اللَّهِ وَاللَّهُ بَصِيرٌ بِالْعِبَادِ ﴿١٥﴾

حزب

الَّذِينَ

**10**- Bêguman ew ên ku kafir in, mal û zarokên wan li cem Xwedê Teala tu feydeyê nadin wan. Ew bi xwe ardûyê agirê cehenemê ne.

**11**- (Riya wan) Wekî riya ehlê Firewn û wan kesên beriya wan e (mîna qewmê Ad û Semûd). Wan, bi ayetên me bawerî neanîn, vêca Xwedê jî, ji ber gunehên wan, ew hingaftin (û helak kirin). Xwedê, li ser kafiran xwediyê ezabê pir dijwar e.

Wextê Pêxember li Bedrê qureyşî têk birin; vegeriya Medînê, cihû kom kirin û ji wan re got: Gelî civata cihûyan! Hîn belayeke mîna belaya ku Xwedê aniye serê Qureyşiyan neaniye serê we, misliman bibin. Jixwe hûn dizanin ku ez pêxemberekî ku hatime şandin. Cihûyan got: Hey Muhemmed! Bila nefsa te, te nexapîne ku te ji Qureyşiyan çend kesên nezan kuştine ku ji bo cengê tu zanîna wan tune bû. Vêca bi xwe bawer nebe ku tu dê karibî me jî têk bibî. Em bi Xwedê sond dixwin, eger tu şerê me bikî; tu dê bi me bizanî ka em çi mêrxas in û tu dê zanibî ku tu rastî tu kesê mîna me nehatiyî. Vêca di vê mijarê de ev ayeta pîroz deket. Hem jî ev ayeta pîroz, mizgîn dida Cenabê Pêxember (s) ku muşrik û cihû dê li hemberî mislimanan têk biçin. Bi rastî ev mucîzeya Qur'ana Hekîm pêk hatiye. Hem muşrik hem jî cihû li hemberî mislimanan şikestine.

**12**- Ji yên kafir re bibêje: Di demeke nêzîk de hûn ê bên şikandin û hûn ê bi bal dojehê ve bên ajotin. Çi pîsecih e ew der!

**13**- Bêguman ji bo we, di du komên ku ew (roja Cenga Bedrê) hatin hemberî hev de îbreteke girîng heye; komekê, di riya Xwedê de şer dikir û ya din jî kafir bûn ku bi dîtina çavan bawermend du qatî xwe didîtin. Xwedê Teala kê bivê bi arîkariya xwe piştgiriya wî dike. Helbet di vê de ji xweyaqilan re îbretek heye.

Hejmara mislimanan sê sed û sêzdeh (313) bû, du hesp, şeş kumzirx û heşt şûrên wan hebûn, muşrik jî nêzî hezar (1000) kesî bûn.

**14**- Hezkirina dilbijênan; jin û zarok, maldariya pir a ji zêr û zîv, hespên durûvkirî, terş (deve, dewar û pez) û çandinî di çavê mirovan de hatiye şîrînkirin. Ha ev kêfborandina jiyana vê dinyayê ye û dûmahîka spehî li cem Xwedê ye.

**15**- Bibêje: Ma ez yeke ji van çêtir ji we re bibêjim? Ji bo yên teqwadar (ew ên ku xwe ji xeşma Xwedê parastine), li cem Xwedayê wan, bihiştên ku di nav wan re çem diherikin hene ku ew ê heta bi hetayê lê bimînin û ji wan re di nav de jinên pak û temîz û qayîlbûna Xwedê heye. Ellah Teala (ji kar û kiryarê) bendeyê xwe agahdar e.

اَلَّذ۪ينَ يَقُولُونَ رَبَّنَٓا اِنَّنَٓا اٰمَنَّا فَاغْفِرْ لَنَا ذُنُوبَنَا وَقِنَا
عَذَابَ النَّارِۚ ﴿١٦﴾ اَلصَّابِر۪ينَ وَالصَّادِق۪ينَ وَالْقَانِت۪ينَ
وَالْمُنْفِق۪ينَ وَالْمُسْتَغْفِر۪ينَ بِالْاَسْحَارِ ﴿١٧﴾ شَهِدَ اللّٰهُ اَنَّهُ
لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَۙ وَالْمَلٰٓئِكَةُ وَاُو۫لُوا الْعِلْمِ قَٓائِمًا بِالْقِسْطِۜ
لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَ الْعَز۪يزُ الْحَك۪يمُۜ ﴿١٨﴾ اِنَّ الدّ۪ينَ عِنْدَ اللّٰهِ
الْاِسْلَامُ۠ وَمَا اخْتَلَفَ الَّذ۪ينَ اُو۫تُوا الْكِتَابَ اِلَّا مِنْ
بَعْدِ مَا جَٓاءَهُمُ الْعِلْمُ بَغْيًا بَيْنَهُمْۜ وَمَنْ يَكْفُرْ بِاٰيَاتِ اللّٰهِ
فَاِنَّ اللّٰهَ سَر۪يعُ الْحِسَابِ ﴿١٩﴾ فَاِنْ حَٓاجُّوكَ فَقُلْ اَسْلَمْتُ
وَجْهِيَ لِلّٰهِ وَمَنِ اتَّبَعَنِۜ وَقُلْ لِلَّذ۪ينَ اُو۫تُوا الْكِتَابَ
وَالْاُمِّيّ۪نَ ءَاَسْلَمْتُمْۜ فَاِنْ اَسْلَمُوا فَقَدِ اهْتَدَوْاۚ وَاِنْ
تَوَلَّوْا فَاِنَّمَا عَلَيْكَ الْبَلَاغُۜ وَاللّٰهُ بَص۪يرٌ بِالْعِبَادِ ﴿٢٠﴾ اِنَّ
الَّذ۪ينَ يَكْفُرُونَ بِاٰيَاتِ اللّٰهِ وَيَقْتُلُونَ النَّبِيّ۪نَ بِغَيْرِ
حَقٍّۙ وَيَقْتُلُونَ الَّذ۪ينَ يَأْمُرُونَ بِالْقِسْطِ مِنَ النَّاسِۙ
فَبَشِّرْهُمْ بِعَذَابٍ اَل۪يمٍ ﴿٢١﴾ اُو۬لٰٓئِكَ الَّذ۪ينَ حَبِطَتْ
اَعْمَالُهُمْ فِي الدُّنْيَا وَالْاٰخِرَةِۘ وَمَا لَهُمْ مِنْ نَاصِر۪ينَ ﴿٢٢﴾

**16**- Ew ên ku dibêjin: Xwedayê me, bêguman me bawerî anî, naxwe li gunehên me bibore û me ji ezabê êgir biparêze!

**17**- Ew ên ku sebirkêş in, rast û dirust in, bi awayê pêdivî îbadetker in, (bi malê xwe di rêka Xwedê de) bexşende ne û di wextê seherê de lêborîna gunehên xwe dixwazin.

**18**- Xwedê Teala şahdeyî da ku bêguman ji bilî wî tu mabûd nîn in. Melayîket û zana jî bi vê yekê şahdeyiyê didin ku ew bi edaletê hukim dike. Ji Wî pê ve tu me'bûd ên bi heqî tun in. Ew e yê 'elîm, yê hekîm.

**19**- Bi rastî li cem Xwedê dînê heq (û meqbûl) bes îslam e. Ew ên ku kitêb ji wan re hatî, piştî ku zanîn ji wan re hat, ji çavnebariya xwe ketin îxtîlafê. Kesê baweriyê bi ayetên Xwedê neyêne, vêca bêguman Xwedê hesabdîtina Wî pir lezdar e.

**20**- Eger (ew di bara dîn de) bi te re xirecirê bikin, ji wan re bibêje: Min digel wan ên ku dane pey min, me xwe ji Xwedê Teala re berdest kir. Ji Xwedankitêb û nexwendeyan (muşrikan) re bibêje: Ma hûn jî, ji Xwedê re berdest bûn? Eger wan jî xwe berdest kir, jixwe ew jî ketine ser rêka rast. Eger ew pişta xwe bidinê, vêca (wezîfeya) te tenê ragihandin e. Xwedê (bi kar û kiryarên) bendeyên xwe bîner e.

Hatiye ragihandin ku çi gava Qasidê Xwedê ev ayet ji xweykitêban re xwend, gotin: Em misliman bûn. Vêca Pêxemberê merhemetê ji cihûyan re got: Ma hûn bi devê xwe dibêjin û bi dilê xwe jî bawer dikin ku Îsa misogeriya (tehqîqa) gotina Xwedê ye, bende û Pêxemberê wî ye? Gotin: Xweda, me ji vê şahidiyê biparêze! Vêca ji filehan re jî got: Ma hûn bi devê xwe dibêjin û bi dilê xwe bawer dikin ku Îsa bende û Pêxemberê Xwedê ye? Gotin: Xweda, me ji vê gotinê biparêze! Vêca Xwedê ji Pêxemberê xwe re got: Heke ew berê xwe ji îmanê vegerînin ew dê tu zerarê nedin te. Lewra wezîfeya te ragihandin e, teblîx e. Xweda evdên xwe rind dibîne. Ew ê ji bo mislimanbûnê xelatê bide wan û ji bo kafirbûnê jî ceza bide wan. Naxwe tu her doza heqiyê ji wan re teblîx bike.

**21**- Bêguman ew ên ku ayetên Xwedê mandel dikin û bi neheqî pêxember û wan ên ku daxwaza qenciyê dikin dikujin, mizgîna ezabekî cansoj bide wan!

**22**- Ha ew, ew kes in ku kirinên wan hem li dinyayê hem jî li axretê pûç bûne û ji wan re tu piştevan û arîkar jî nîn in (ku wan ji ezabê Xwedê biparêzin).

اَلَمْ تَرَ اِلَى الَّذٖينَ اُوتُوا نَصٖيبًا مِنَ الْكِتَابِ يُدْعَوْنَ اِلٰى كِتَابِ
اللّٰهِ لِيَحْكُمَ بَيْنَهُمْ ثُمَّ يَتَوَلّٰى فَرٖيقٌ مِنْهُمْ وَهُمْ مُعْرِضُونَ
٢٣ ذٰلِكَ بِاَنَّهُمْ قَالُوا لَنْ تَمَسَّنَا النَّارُ اِلَّٓا اَيَّامًا مَعْدُودَاتٍ
وَغَرَّهُمْ فٖى دٖينِهِمْ مَا كَانُوا يَفْتَرُونَ ٢٤ فَكَيْفَ اِذَا جَمَعْنَاهُمْ
لِيَوْمٍ لَا رَيْبَ فٖيهِ وَوُفِّيَتْ كُلُّ نَفْسٍ مَا كَسَبَتْ وَهُمْ
لَا يُظْلَمُونَ ٢٥ قُلِ اللّٰهُمَّ مَالِكَ الْمُلْكِ تُؤْتِى الْمُلْكَ مَنْ تَشَٓاءُ
وَتَنْزِعُ الْمُلْكَ مِمَّنْ تَشَٓاءُ وَتُعِزُّ مَنْ تَشَٓاءُ وَتُذِلُّ مَنْ تَشَٓاءُ
بِيَدِكَ الْخَيْرُ اِنَّكَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَدٖيرٌ ٢٦ تُولِجُ الَّيْلَ فِى النَّهَارِ
وَتُولِجُ النَّهَارَ فِى الَّيْلِ وَتُخْرِجُ الْحَيَّ مِنَ الْمَيِّتِ وَتُخْرِجُ
الْمَيِّتَ مِنَ الْحَيِّ وَتَرْزُقُ مَنْ تَشَٓاءُ بِغَيْرِ حِسَابٍ ٢٧ لَا يَتَّخِذِ
الْمُؤْمِنُونَ الْكَافِرٖينَ اَوْلِيَٓاءَ مِنْ دُونِ الْمُؤْمِنٖينَ وَمَنْ يَفْعَلْ
ذٰلِكَ فَلَيْسَ مِنَ اللّٰهِ فٖى شَيْءٍ اِلَّٓا اَنْ تَتَّقُوا مِنْهُمْ تُقٰيةً
وَيُحَذِّرُكُمُ اللّٰهُ نَفْسَهُ وَاِلَى اللّٰهِ الْمَصٖيرُ ٢٨ قُلْ اِنْ تُخْفُوا
مَا فٖى صُدُورِكُمْ اَوْ تُبْدُوهُ يَعْلَمْهُ اللّٰهُ وَيَعْلَمُ مَا فِى
السَّمٰوَاتِ وَمَا فِى الْاَرْضِ وَاللّٰهُ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَدٖيرٌ ٢٩

يَوْمَ

**23**- (Resûlê min!) Ma tu li wan kesên ku parek ji Tewratê ji wan re hatiye dayîn, nanêrî ?! Ew bi bal kitêba Xwedê ve têne gazîkirin da ku di navbera wan de hukim bike, pişt re birek ji wan berê xwe vedigerînin û ew jê bêzê dikin.

**24**- Ev helwesta wan ji ber vê ye; lewra dibêjin: "Ji çend rojên bijimar pê ve (ew rojên ku ji golikê re îbadet kiribûn) agir bi me nakeve" û ew tiştê wan bi ser dînê xwe ve zêde kir, ew ji rê xistin.

**25**- Vêca dema em, ji bo roja ku guman tê de nîn e wan li hev bicivînin û ji her kesî re tişta ku qezenc kiriye bi temamî û bêstemkarî bête dayîn, ma gelo rewşa wan dê çawan be?!

**26**- Bibêje: Xwedêyo! Tu yî, xwediyê xwedaniyê. Tu kê bivê milk didî wî û kê bivê milk jê distînî. Tu kê bivê ezîz dikî, kê jî bivê perîşan dikî. Xêr û bêr her di destê te de ye. Bêguman Tu qadirê li ser her tiştî yî.

**27**- Tu şevê dixî (nava) rojê, rojê jî dixî (nava) şevê, tu yê sax ji yê mirî derdixî û yê mirî jî ji yê sax derdixî û tu kê bivê bêhesab rizqê wî/wê didî.

Ev ayeta pîroz dide nîşan ku dema şev kin dibe roj dirêj dibe û dema roj kin dibe şev dirêj dibe. Ev jî delîl û belge ye li ser qudreta Xwedê. "Tu yê sax ji yê mirî derdixî û tu yê mirî ji yê sax derdixî " yanî: Çandiniyê ji libê derdixe, libê ji çandiniyê derdixe, xurmeyê ji sîsikê derdixî, sîsikê ji xurmeyê derdixî, hêkê ji mirîşkê derdixî, mirîşkê ji hêkê derdixe. Bi gotineke din; ji yên kafir mumin û ji yê mumin kafiran derdixî.

**28**- Bila bawermend ji bilî bawermendan, kafiran ji xwe re nekin dost û piştevan! Kî vê bike, bila tu hêviyê ji Xwedê meke. Lê ku hûn hefza xwe ji wan bikin ev xem nake, Xwedê Teala we ji xwe dide tirsandin û veger bes bi bal Xwedê ve ye.

Ev ayeta pîroz hukmekî vebirî yê îslamiyetê rave dike ku bawermend hîç nikarin kafiran ji bo xwe bikin dost û neşên ji wan hez bikin. Lêbelê ku ji wan bitirsin ev rewş cuda ye. Di nava xelkê de ev yek bi "Teqiye"yê meşhûr e. Eger musliman bitirsin ku kafir dê zerarê bidin wan wê çaxê ji wan re ruxset heye ku bi serê zimên -ne ji dil- ji wan re bibêjin, em ji we hez dikin. Lewra mirov dikare bi vî awayî xwe ji neqenciya kafiran biparêze û belaya wan ji xwe veke. Çunkî hatiye rîwayetkirin ku Pêxember wisa gotiye: Em di rûyê hin civatan de dikenin. Hal ev e ku dilê me lanetê li wan dibarîne.

**29**- Bibêje: Eger hûn a di dilê xwe de veşêrin an jî hûn wê eşkere bikin her Xwedê Teala pê dizane. Ew bi tiştê li asîmanan û bi tiştê ku li erdê heye jî dizane. Xwedê Teala li ser her tiştî kara ye.

يَوْمَ تَجِدُ كُلُّ نَفْسٍ مَا عَمِلَتْ مِنْ خَيْرٍ مُحْضَرًا وَمَا عَمِلَتْ
مِنْ سُوٓءٍ تَوَدُّ لَوْ اَنَّ بَيْنَهَا وَبَيْنَهُٓ اَمَدًا بَعِيدًا وَيُحَذِّرُكُمُ اللّٰهُ
نَفْسَهُ وَاللّٰهُ رَؤُ۫فٌ بِالْعِبَادِ ﴿٣٠﴾ قُلْ اِنْ كُنْتُمْ تُحِبُّونَ اللّٰهَ
فَاتَّبِعُونِي يُحْبِبْكُمُ اللّٰهُ وَيَغْفِرْ لَكُمْ ذُنُوبَكُمْ وَاللّٰهُ غَفُورٌ رَحِيمٌ
﴿٣١﴾ قُلْ اَطِيعُوا اللّٰهَ وَالرَّسُولَ فَاِنْ تَوَلَّوْا فَاِنَّ اللّٰهَ لَا يُحِبُّ
الْكَافِرِينَ ﴿٣٢﴾ اِنَّ اللّٰهَ اصْطَفٰٓى اٰدَمَ وَنُوحًا وَاٰلَ اِبْرٰهٖيمَ وَاٰلَ
عِمْرٰنَ عَلَى الْعَالَمٖينَ ﴿٣٣﴾ ذُرِّيَّةً بَعْضُهَا مِنْ بَعْضٍ وَاللّٰهُ سَمٖيعٌ
عَلٖيمٌ ﴿٣٤﴾ اِذْ قَالَتِ امْرَاَتُ عِمْرٰنَ رَبِّ اِنّٖي نَذَرْتُ لَكَ مَا فٖي
بَطْنٖي مُحَرَّرًا فَتَقَبَّلْ مِنّٖي اِنَّكَ اَنْتَ السَّمٖيعُ الْعَلٖيمُ ﴿٣٥﴾ فَلَمَّا
وَضَعَتْهَا قَالَتْ رَبِّ اِنّٖي وَضَعْتُهَٓا اُنْثٰى وَاللّٰهُ اَعْلَمُ بِمَا وَضَعَتْ
وَلَيْسَ الذَّكَرُ كَالْاُنْثٰى وَاِنّٖي سَمَّيْتُهَا مَرْيَمَ وَاِنّٖٓي اُعٖيذُهَا بِكَ
وَذُرِّيَّتَهَا مِنَ الشَّيْطَانِ الرَّجٖيمِ ﴿٣٦﴾ فَتَقَبَّلَهَا رَبُّهَا بِقَبُولٍ حَسَنٍ
وَاَنْبَتَهَا نَبَاتًا حَسَنًا وَكَفَّلَهَا زَكَرِيَّا كُلَّمَا دَخَلَ عَلَيْهَا زَكَرِيَّا
الْمِحْرَابَ وَجَدَ عِنْدَهَا رِزْقًا قَالَ يَا مَرْيَمُ اَنّٰى لَكِ هٰذَا قَالَتْ
هُوَ مِنْ عِنْدِ اللّٰهِ اِنَّ اللّٰهَ يَرْزُقُ مَنْ يَشَٓاءُ بِغَيْرِ حِسَابٍ ﴿٣٧﴾

**30**- Roja ku her kes qencî û neqenciya ku kiriye, li pêşberî xwe hazir dibîne. (Di wê rojê de însan) dixwaze ku di navbera wî û kirinên wî de mesafeyeke dûr hebe. Ellah Teala we ji hatina li hemberî xwe ditirsîne. Xwedê ji bo evdên xwe pir dilovîn e.

**31**- Bibêje: Eger hûn bi rastî ji Xwedê hez dikin, naxwe bidin pey min, Xwedê dê ji we hez bike û li gunehên we bibore. Xwedê her gunehbexş û dilovîn e.

**32**- Bibêje: Bi gotina Xwedê û pêxemberê Wî bikin. Vêca eger ew berê xwe jê vegerînin, êdî bêguman Xwedê ji kafiran hez nake.

**33** – Bêguman Xwedê Adem û Nûh û malbata Îbrahîm û malbata Îmran di ser cîhaniyan (ên dema wan) re girtiye.

**34**- Ev nesleke (nêzî hev û) ji hev e. Xwedê bihîzer e, zana ye.

**35**- Di bîr bîne, dema jina nebî Îmran got: Xwedayê min! Min a ku di zikê min de, tenê ji bo îbadetê Te û (xizmeta) mala Te nezir kir, vêca ji min qebûl bike. Bêguman bes Tu yî yê bihîzer, ê zana (bihîzerê bi daxwaza min û zanayê bi niyeta min).

**36**- Çi dema wê (jina Îmran) hemla xwe danî, got: Xwedayê min! Min hemla xwe keç danî -Xwedê bêhtir dizanê ka çi daniye- û kur ne wekî keçê ye, min navê wê Meryem danî. Ez wê û zuriyeta wê ji şeytanê qewitî, bi Te diparêzim.

**37**- Vêca Xwedayê wê, bi qebûleke rind (nezra wê) jê qebûl kir; ew spehî rakir û rind perwerde kir. Zekeriya jî lê xwedîtî kir. Çi wexta Zekeriya ji bo serlêdanê çûbe îbadetgeha wê, fêkî û xwarin li cem didîtin. Zekeriya got: "Hey Meryem! Ev ji te re ji ku tê?" Wê jî (jê re wiha) got: Ew ji nik Xwedê ye, bi rastî Xwedê kê bivê bêjimar rizqê wî/wê didê.

هُنَالِكَ دَعَا زَكَرِيَّا رَبَّهُ قَالَ رَبِّ هَبْ لِي مِنْ لَدُنْكَ
ذُرِّيَّةً طَيِّبَةً اِنَّكَ سَمِيعُ الدُّعَاءِ ﴿٣٨﴾ فَنَادَتْهُ الْمَلٰٓئِكَةُ وَهُوَ
قَآئِمٌ يُصَلِّي فِي الْمِحْرَابِ اَنَّ اللّٰهَ يُبَشِّرُكَ بِيَحْيٰى مُصَدِّقًا
بِكَلِمَةٍ مِنَ اللّٰهِ وَسَيِّدًا وَحَصُورًا وَنَبِيًّا مِنَ الصَّالِحِينَ ﴿٣٩﴾
قَالَ رَبِّ اَنّٰى يَكُونُ لِي غُلَامٌ وَقَدْ بَلَغَنِيَ الْكِبَرُ وَامْرَاَتِي
عَاقِرٌ قَالَ كَذٰلِكَ اللّٰهُ يَفْعَلُ مَا يَشَآءُ ﴿٤٠﴾ قَالَ رَبِّ اجْعَلْ لِي
اٰيَةً قَالَ اٰيَتُكَ اَلَّا تُكَلِّمَ النَّاسَ ثَلٰثَةَ اَيَّامٍ اِلَّا رَمْزًا وَاذْكُرْ
رَبَّكَ كَثِيرًا وَسَبِّحْ بِالْعَشِيِّ وَالْاِبْكَارِ ﴿٤١﴾ وَاِذْ قَالَتِ
الْمَلٰٓئِكَةُ يَا مَرْيَمُ اِنَّ اللّٰهَ اصْطَفٰيكِ وَطَهَّرَكِ وَاصْطَفٰيكِ
عَلٰى نِسَآءِ الْعَالَمِينَ ﴿٤٢﴾ يَا مَرْيَمُ اقْنُتِي لِرَبِّكِ وَاسْجُدِي
وَارْكَعِي مَعَ الرَّاكِعِينَ ﴿٤٣﴾ ذٰلِكَ مِنْ اَنْبَآءِ الْغَيْبِ نُوحِيهِ
اِلَيْكَ وَمَا كُنْتَ لَدَيْهِمْ اِذْ يُلْقُونَ اَقْلَامَهُمْ اَيُّهُمْ يَكْفُلُ
مَرْيَمَ وَمَا كُنْتَ لَدَيْهِمْ اِذْ يَخْتَصِمُونَ ﴿٤٤﴾ اِذْ قَالَتِ الْمَلٰٓئِكَةُ
يَا مَرْيَمُ اِنَّ اللّٰهَ يُبَشِّرُكِ بِكَلِمَةٍ مِنْهُ اسْمُهُ الْمَسِيحُ عِيسَى
ابْنُ مَرْيَمَ وَجِيهًا فِي الدُّنْيَا وَالْاٰخِرَةِ وَمِنَ الْمُقَرَّبِينَ ﴿٤٥﴾
وَيُكَلِّمُ

**38**- Li wê derê Zekeriya gazî Xwedayê xwe kir: Xwedayê min! Ji nik xwe zuriyeteke pak bide min. Bêguman Tu, duawergir î.

**39**- Vêca di heman dema ku Zekeriya di îbadetgeha xwe de nimêj dikir, melayîketan lê gazî kir. Jê re gotin: Bêguman Xwedê (bi navê) Yehya mizgîna (kurekî) dide te, baweriyê bi peyva Xweda (ku Îsa Pêxember e) diîne, serwer û pêşrew e, ji bo ebdîniyê xweragir e û ew pêxemberekî ji salihan e.

**40**- Zekeriya got: Xwedayê min! Çawan kur ji min re çêbe. Hal ev e ku ez bûme kalemêr û jina min jî nezayok e. Xwedê Teala (jê re) got: Her wisan e tiştê Xweda bixwaze dê bike.

**41**- Zekeriya got: Xwedayê min! Nîşanekê bide min. (Xwedê jê re) got: Nîşana te ew e ku ji îşaretê pê ve heta sê rojan tu dê bi mirovan re nepeyivî, Xwedayê xwe pir bi bîr bîne û sibeh û êvaran Wî pak bidêre.

**42**- Di bîr bîne dema melayîketan got: Ey Meryem! Xwedê Teala (ji nava jinên alemê) tu bijartî; tu pak û paqij kirî û tu di ser hemû jinên cîhanê re girtî (ew ên ku di dema wê de).

**43**- Hey Meryem! Tenê ji Xwedayê xwe re îbadetê bike; here secdeyê û digel nimêjkeran nimêj bike.

**44**- (Ya Muhemmed!) Ev ji xeberên nependî ne ku bi (riya) peyxamê (wehyê) em wan ji te re radigihînin. Dema wan, (gelo) ka xwedîkirina Meryemê dê li kîjan ji wan bikeve, qelemên xwe (ji bo pişkkêşanê) diavêtin, tu ne li cem wan bûyî û dema wan (ji bo vê meseleyê) xirecir dikirin jî tu ne li cem wan bûyî.

Hatiye ragihandin ku gava xwestin qur'e bikin ka ji wan kî dê bibe berpirsê perwerdeya Meryemê, qelemên xwe yên ku pê Tewrat dinivîsîn avêtin çem. Vêca qelema kîjanî derketa ser rûyê avê, ew yê bibûya kefîlê wê. Piştî ku qelemên xwe avêtin çem, ya Nebî Zekeriya (e.) li ser avê sekinî û ew bû kefîlê Meryemê.

**45**- Dema melayîketan got: Hey Meryem! Xwedê mizgîniya kurekî bi gotineke ji cem xwe (bêyî navgîna bavekî, bes bi gotina "**çêbe!**") dide te. Navê wî Mesîh; Îsayê kurê Meryemê ye. Hem li dinyayê, hem jî li axretê (mirovekî) rûmetdar û yek ji yên nêzî Xwedê ye.

وَيُكَلِّمُ النَّاسَ فِى الْمَهْدِ وَكَهْلاً وَمِنَ الصَّالِحِينَ ﴿٤٦﴾ قَالَتْ
رَبِّ اَنّٰى يَكُونُ لِى وَلَدٌ وَلَمْ يَمْسَسْنِى بَشَرٌ قَالَ كَذٰلِكِ
اللّٰهُ يَخْلُقُ مَا يَشَٓاءُ اِذَا قَضٰٓى اَمْرًا فَاِنَّمَا يَقُولُ لَهُ كُنْ
فَيَكُونُ ﴿٤٧﴾ وَيُعَلِّمُهُ الْكِتَابَ وَالْحِكْمَةَ وَالتَّوْرٰيةَ وَالْاِنْجِيلَ
﴿٤٨﴾ وَرَسُولاً اِلٰى بَنٖٓى اِسْرَٓائِيلَ اَنّٖى قَدْ جِئْتُكُمْ بِاٰيَةٍ مِنْ
رَبِّكُمْ اَنّٖٓى اَخْلُقُ لَكُمْ مِنَ الطّٖينِ كَهَيْـَٔةِ الطَّيْرِ فَاَنْفُخُ فٖيهِ
فَيَكُونُ طَيْرًا بِاِذْنِ اللّٰهِ وَاُبْرِئُ الْاَكْمَهَ وَالْاَبْرَصَ وَاُحْيِ
الْمَوْتٰى بِاِذْنِ اللّٰهِ وَاُنَبِّئُكُمْ بِمَا تَأْكُلُونَ وَمَا تَدَّخِرُونَ فٖى
بُيُوتِكُمْ اِنَّ فٖى ذٰلِكَ لَاٰيَةً لَكُمْ اِنْ كُنْتُمْ مُؤْمِنٖينَ ﴿٤٩﴾
وَمُصَدِّقًا لِمَا بَيْنَ يَدَىَّ مِنَ التَّوْرٰيةِ وَلِاُحِلَّ لَكُمْ بَعْضَ
الَّذٖى حُرِّمَ عَلَيْكُمْ وَجِئْتُكُمْ بِاٰيَةٍ مِنْ رَبِّكُمْ فَاتَّقُوا
اللّٰهَ وَاَطٖيعُونِ ﴿٥٠﴾ اِنَّ اللّٰهَ رَبّٖى وَرَبُّكُمْ فَاعْبُدُوهُ
هٰذَا صِرَاطٌ مُسْتَقٖيمٌ ﴿٥١﴾ فَلَمَّٓا اَحَسَّ عٖيسٰى مِنْهُمُ
الْكُفْرَ قَالَ مَنْ اَنْصَارٖٓى اِلَى اللّٰهِ قَالَ الْحَوَارِيُّونَ
نَحْنُ اَنْصَارُ اللّٰهِ اٰمَنَّا بِاللّٰهِ وَاشْهَدْ بِاَنَّا مُسْلِمُونَ ﴿٥٢﴾

**46**- Îsa, di dergûşê de û di kalîtiyê de jî bi mirovan re dê bipeyive û dê bibe ji salihan.

**47**- Meryemê got: Xwedayê min! Dê çawa zarok ji min re çêbe digel ku tu kesî dest jî nedaye min? Xwedê Teala jê re got: Wisan e, tiştê Xwedê Teala bivê diafirîne. Dema hukim li karekî bike bi tenê jê re dibêje "**Çêbe**!" ew jî di cih de çêdibe.

**48**- (Melayîketan di bara Îsa de bi Meryemê re axaftina xwe wiha berdewam kir): Xwedê, dê wî fêrî nivîsandinê, hîkmetê, Tewrat û Incîlê bike.

**49**- (Xwedê Teala, dê wî) ji bo îsraîliyan bi pêxemberî bişîne (û ew ê ji wan re wiha bibêje:) Min ji cem Xwedayê we ji bo we mucîzeyek aniye; ez ji bo we ji heriyê şeklê teyran çêdikim û paşê ez pif dikimê, vêca bi destûra Xwedê ew dibe teyr. Dîsa bi destûra Xwedê ez kor û kotîyan rehet dikim û miriyan jî sax dikim. Ez, tiştê ku hûn li malên xwe dixwin û hiltînin (pê dizanim û ez ê) ji we re jê xeber bidim. Eger bi rastî hûn bawermend bin, di vê rewşê de ji bo we îbret hene.

**50**- (Îsa berdewam kir û ji wan re got: Ez pêxember im, ji bo we hatime şandin) Ku ez Tewrata beriya xwe rast bidêrim, hin tiştên ku ji we re heram bûbûn ji we re helal bikim û min ji nik Xwedayê we mucîzeyek ji bo we aniye. Naxwe ji (ezabê) Xwedê bitirsin û bi gotina min bikin.

**51**- Bêguman Xwedê Rebê min û Rebê we ye, naxwe jê re îbadetê bikin. Ha ev e rêka rast.

**52**- Çi dema Îsa hizir kir ku ew baweriyê pê nayînin, got: Kî di rêka Xwedê Teala de piştevan û arîkarê min e? Hewariyan got: Em in arîkarên (dînê) Xwedê Teala, me bawerî bi Xwedê Teala anî û tu jî şahid be ku bi rastî em misliman in.

رَبَّنَا اٰمَنَّا بِمَا اَنْزَلْتَ وَاتَّبَعْنَا الرَّسُولَ فَاكْتُبْنَا مَعَ الشَّاهِدٖينَ
﴿٥٣﴾ وَمَكَرُوا وَمَكَرَ اللّٰهُ وَاللّٰهُ خَيْرُ الْمَاكِرٖينَ ﴿٥٤﴾ اِذْ قَالَ
اللّٰهُ يَا عٖيسٰٓى اِنّٖى مُتَوَفّٖيكَ وَرَافِعُكَ اِلَيَّ وَمُطَهِّرُكَ مِنَ
الَّذٖينَ كَفَرُوا وَجَاعِلُ الَّذٖينَ اتَّبَعُوكَ فَوْقَ الَّذٖينَ كَفَرُوٓا
اِلٰى يَوْمِ الْقِيٰمَةِ ثُمَّ اِلَيَّ مَرْجِعُكُمْ فَاَحْكُمُ بَيْنَكُمْ فٖيمَا
كُنْتُمْ فٖيهِ تَخْتَلِفُونَ ﴿٥٥﴾ فَاَمَّا الَّذٖينَ كَفَرُوا فَاُعَذِّبُهُمْ
عَذَابًا شَدٖيدًا فِى الدُّنْيَا وَالْاٰخِرَةِ وَمَا لَهُمْ مِنْ نَاصِرٖينَ ﴿٥٦﴾
وَاَمَّا الَّذٖينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ فَيُوَفّٖيهِمْ اُجُورَهُمْ
وَاللّٰهُ لَا يُحِبُّ الظَّالِمٖينَ ﴿٥٧﴾ ذٰلِكَ نَتْلُوهُ عَلَيْكَ مِنَ الْاٰيَاتِ
وَالذِّكْرِ الْحَكٖيمِ ﴿٥٨﴾ اِنَّ مَثَلَ عٖيسٰى عِنْدَ اللّٰهِ كَمَثَلِ اٰدَمَ
خَلَقَهُ مِنْ تُرَابٍ ثُمَّ قَالَ لَهُ كُنْ فَيَكُونُ ﴿٥٩﴾ اَلْحَقُّ مِنْ
رَبِّكَ فَلَا تَكُنْ مِنَ الْمُمْتَرٖينَ ﴿٦٠﴾ فَمَنْ حَٓاجَّكَ فٖيهِ
مِنْ بَعْدِ مَا جَٓاءَكَ مِنَ الْعِلْمِ فَقُلْ تَعَالَوْا نَدْعُ اَبْنَٓاءَنَا
وَاَبْنَٓاءَكُمْ وَنِسَٓاءَنَا وَنِسَٓاءَكُمْ وَاَنْفُسَنَا وَاَنْفُسَكُمْ
ثُمَّ نَبْتَهِلْ فَنَجْعَلْ لَعْنَتَ اللّٰهِ عَلَى الْكَاذِبٖينَ ﴿٦١﴾

اِنَّ هٰذَا

**53**- (Hewariyan got:) Xwedayê me! Me bawerî bi ya ku te hinartiye anî û me da pey pêxemberê Te. Vêca me ji şahidan binivîse (ew ên ku şahdehiyê ji bo yekîtiya te didin).

**54**- (Cihûyan bi dizî) dek û dolab li ser Îsa pêxember gerandin (da wî bikujin). Xwedê jî dek û dolab li ser wan gerand. Xwedê çêtir dek û dolaban digerîne.

Cihûyan bi dizî kemîn li ber Îsa vedan û kuştina wî sipartin mirovekî. Xwedê jî kemîna wan pûç derxist, yekî ku dişibiya Îsa kuştin û ji wan we ye ku bi rastî wan Îsa kuştiye. Hal ev e ku Xwedê Îsa rakiriye asîmanan.

**55**- Di bîr bîne dema Xwedê got: Hey Îsa! Bêguman Ez ê te ji erdê bigirim û (bêyî ku zerarek bigihîje te, bi ruh û beden ve) te rakim cem xwe, Ez ê te ji yên kafir biparêzim. Ew ên ku dane pey te, heta roja qiyametê ez dê wan bi ser ên kafir bixim. Piştre, vegera we bi bal min ve ye, ez ê di navbera we de; di bara tiştê ku hûn bi hev ketin de hukim bikim.

**56**- Vêca herçî yên ku kafir in, li dinya û li axîretê ez ê ezabekî dijwar bidim wan û tu arîkarên wan jî dê nebin.

**57**- Herçî yên ku bawerî anîn û karên qenc kirin, xelata wan dê bêkêmasî ji wan re bê dayîn. Xwedê Teala ji zaliman hez nake.

**58**- (Ya Muhemmed!) Ev qiseya (Îsa û diya wî) ku em ji te re dixwînin, ji ayet û bîranînên xwedanhîkmet in (ku ew ji Qur'ana pîroz in).

**59**- Bêguman li cem Xwedê, rewşa Îsa jî wekî rewşa Adem e. Xwedê ew ji axê afirand, piştre jê re got, "**çêbe**!" Vêca ew jî çêbû.

**60**- Ev (gotina di bara Îsa Pêxember de) heq e, ji cem Xwedayê te ye. Naxwe tu nebe ji yên ku ketine gumanê.

**61**- (Ya Muhemmed!) Piştî vê zanîna ku ji te re hatî, kî di bara wê (mijara Îsa) de bi te re nîqaşê bike (ji wan re) bibêje: De werin, em gazî zarokên xwe û zarokên we, gazî jinên xwe û jinên we û gazî xwe û we bikin; piştre em bi hev re nifiran bikin û laneta Xwedê li derewînan bibarînin.

اِنَّ هٰذَا لَهُوَ الْقَصَصُ الْحَقُّۚ وَمَا مِنْ اِلٰهٍ اِلَّا اللّٰهُۜ وَاِنَّ اللّٰهَ
لَهُوَ الْعَزٖيزُ الْحَكٖيمُ ﴿٦٢﴾ فَاِنْ تَوَلَّوْا فَاِنَّ اللّٰهَ عَلٖيمٌ
بِالْمُفْسِدٖينَ ﴿٦٣﴾ قُلْ يَٓا اَهْلَ الْكِتَابِ تَعَالَوْا اِلٰى كَلِمَةٍ سَوَٓاءٍ
بَيْنَنَا وَبَيْنَكُمْ اَلَّا نَعْبُدَ اِلَّا اللّٰهَ وَلَا نُشْرِكَ بِهٖ شَيْـًٔا وَلَا يَتَّخِذَ
بَعْضُنَا بَعْضًا اَرْبَابًا مِنْ دُونِ اللّٰهِۜ فَاِنْ تَوَلَّوْا فَقُولُوا اشْهَدُوا
بِاَنَّا مُسْلِمُونَ ﴿٦٤﴾ يَٓا اَهْلَ الْكِتَابِ لِمَ تُحَآجُّونَ فٖي اِبْرٰهٖيمَ
وَمَٓا اُنْزِلَتِ التَّوْرٰيةُ وَالْاِنْجٖيلُ اِلَّا مِنْ بَعْدِهٖۜ اَفَلَا تَعْقِلُونَ ﴿٦٥﴾
هَٓا اَنْتُمْ هٰٓؤُلَٓاءِ حَاجَجْتُمْ فٖيمَا لَكُمْ بِهٖ عِلْمٌ فَلِمَ تُحَآجُّونَ
فٖيمَا لَيْسَ لَكُمْ بِهٖ عِلْمٌۜ وَاللّٰهُ يَعْلَمُ وَاَنْتُمْ لَا تَعْلَمُونَ ﴿٦٦﴾
مَا كَانَ اِبْرٰهٖيمُ يَهُودِيًّا وَلَا نَصْرَانِيًّا وَلٰكِنْ كَانَ حَنٖيفًا
مُسْلِمًاۜ وَمَا كَانَ مِنَ الْمُشْرِكٖينَ ﴿٦٧﴾ اِنَّ اَوْلَى النَّاسِ بِاِبْرٰهٖيمَ
لَلَّذٖينَ اتَّبَعُوهُ وَهٰذَا النَّبِيُّ وَالَّذٖينَ اٰمَنُواۜ وَاللّٰهُ وَلِيُّ
الْمُؤْمِنٖينَ ﴿٦٨﴾ وَدَّتْ طَٓائِفَةٌ مِنْ اَهْلِ الْكِتَابِ لَوْ يُضِلُّونَكُمْۜ
وَمَا يُضِلُّونَ اِلَّٓا اَنْفُسَهُمْ وَمَا يَشْعُرُونَ ﴿٦٩﴾ يَٓا اَهْلَ
الْكِتَابِ لِمَ تَكْفُرُونَ بِاٰيَاتِ اللّٰهِ وَاَنْتُمْ تَشْهَدُونَ ﴿٧٠﴾

**62**- Bêguman eva ha; mîsoger qiseyeke rasteqîne ye. Ji Ellah Teala pê ve tu xweda tun in. Bêguman Xwedê Teala, teqez ew e yê serdest û karbinecih.

**63**- Eger dîsa berê xwe ji îmanê biguherînin, bêguman Xweda Teala zanayê bi mifsidan e.

**64**- Bibêje: Gelî xwedankitêban! Werin bêjeyekê qebûl bikin ku em û hûn tê de wekhev in; "Em ji Xwedê pê ve îbadeta tu kesê din nekin, em tiştekî jê re nekin şerîk û bila ji bilî Xwedê hin ji me yên din, ji xwe re neke Xweda." Eger dîsa ew berê xwe ji (banga te) vegerînin, wê gavê ji wan re bibêjin: "Hûn şahid bin ku bi rastî em misliman in."

**65**- Gelî yên xwedankitêb! Çima hûn di bara Îbrahîm de nîqaşê dikin? Hal ev e ku Tewrat û Incîl piştî wî hatine şandin, ma qet hûn nahizirin (ku gotina we ya di heqê Îbrahîm de pûç û îftira ye)?

**66**- Gelî yên xwedankitêb! Ha hûn ev in ku di heqê tiştê (hûn) zanin de (ne rast dibêjin û) nîqaşê dikin? Êdî çima di heqê ya ku zanîna we pê nîn e, hûn nîqaşê dikin. Xwedê Teala dizane û hûn nizanin.

Cihû û filehan di navbera xwe de guftûgo kir. Cihûyan got: Îbrahîm cihû bû, filehan jî got: Na, Îbrahîm fileh bû. Hal ev e ku îdîayên her du rexan jî bêdelîl bûn. Lewra ev ayet eşkere dike ku Tewrat û Incîl piştî Îbrahîm hatine nazilkirin, vêca diyar e ku îddîaya her duyan jî betal e. Lewra Îbrahîm ne cihû bû; ne jî fileh bûye. Li gorî ji Îbnî Ebbasî jî hatiye ragihandin: Haxamên cihûyan û filehên Necranê li bal Pêxemberê merhemetê civiyan û der heqê Îbrahîmî de bi hev ketin. Cihûyan got: Îbrahîm tenê cihû bû. Filehan got: Ew tenê fileh bû. Ji loma Xwedê di heqê vê mijarê de ev ayeta ha nazil kir:

**67**- Îbrahîm, ne cihû bû û ne jî fileh bû, belê ew dînpakê misliman bû û ne ji muşrikan jî bû.

**68**- Bêguman mirovên ku herî nêzî Îbrahîm in, ew ên ku dane pey şopa wî û ev Pêxember (Muhemmed) û bawermendên ji umeta Muhemmed in. Xwdê xwedî û arîkarê bawermendan e.

**69**- (Gelî mumînan!) Civateke ji ehlê kitêban çiqas ji dil dixwest ku we ji rê derîne. Hal ev e ku ew ji xwe pê ve tu kesî ji rê dernayînin û ew bi vê jî nizanin.

**70**- Gelî yên xwedankitêb! Çima hûn ayetên Xwedê înkar dikin? Hal ev e ku hûn jî dizanin ku ew heq in.

يَٓا اَهْلَ الْكِتَابِ لِمَ تَلْبِسُونَ الْحَقَّ بِالْبَاطِلِ وَتَكْتُمُونَ
الْحَقَّ وَاَنْتُمْ تَعْلَمُونَ ﴿٧١﴾ وَقَالَتْ طَٓائِفَةٌ مِنْ اَهْلِ الْكِتَابِ
اٰمِنُوا بِالَّذ۪ٓي اُنْزِلَ عَلَى الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَجْهَ النَّهَارِ وَاكْفُرُٓوا
اٰخِرَهُ لَعَلَّهُمْ يَرْجِعُونَ ﴿٧٢﴾ وَلَا تُؤْمِنُٓوا اِلَّا لِمَنْ تَبِعَ د۪ينَكُمْ
قُلْ اِنَّ الْهُدٰى هُدَى اللّٰهِ اَنْ يُؤْتٰٓى اَحَدٌ مِثْلَ مَٓا اُو۫ت۪يتُمْ اَوْ
يُحَٓاجُّوكُمْ عِنْدَ رَبِّكُمْ قُلْ اِنَّ الْفَضْلَ بِيَدِ اللّٰهِ يُؤْت۪يهِ مَنْ
يَشَٓاءُ وَاللّٰهُ وَاسِعٌ عَل۪يمٌ ﴿٧٣﴾ يَخْتَصُّ بِرَحْمَتِه۪ مَنْ يَشَٓاءُ
وَاللّٰهُ ذُو الْفَضْلِ الْعَظ۪يمِ ﴿٧٤﴾ وَمِنْ اَهْلِ الْكِتَابِ مَنْ اِنْ
تَأْمَنْهُ بِقِنْطَارٍ يُؤَدِّه۪ٓ اِلَيْكَ وَمِنْهُمْ مَنْ اِنْ تَأْمَنْهُ بِد۪ينَارٍ
لَا يُؤَدِّه۪ٓ اِلَيْكَ اِلَّا مَا دُمْتَ عَلَيْهِ قَٓائِمًا ذٰلِكَ بِاَنَّهُمْ قَالُوا لَيْسَ
عَلَيْنَا فِي الْاُمِّيّ۪نَ سَب۪يلٌ وَيَقُولُونَ عَلَى اللّٰهِ الْكَذِبَ وَهُمْ
يَعْلَمُونَ ﴿٧٥﴾ بَلٰى مَنْ اَوْفٰى بِعَهْدِه۪ وَاتَّقٰى فَاِنَّ اللّٰهَ يُحِبُّ
الْمُتَّق۪ينَ ﴿٧٦﴾ اِنَّ الَّذ۪ينَ يَشْتَرُونَ بِعَهْدِ اللّٰهِ وَاَيْمَانِهِمْ ثَمَنًا
قَل۪يلًا اُو۬لٰٓئِكَ لَا خَلَاقَ لَهُمْ فِي الْاٰخِرَةِ وَلَا يُكَلِّمُهُمُ اللّٰهُ
وَلَا يَنْظُرُ اِلَيْهِمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ وَلَا يُزَكّ۪يهِمْ وَلَهُمْ عَذَابٌ اَل۪يمٌ ﴿٧٧﴾

وَاِنَّ

71- Gelî yên xwedankitêb! Ji bo çi hûn heqiyê bi batilî cil dikin û ji bo çi hûn heqiyê vedişêrin? Digel ku hûn dizanin heq çi ye jî.

72- Civateke ji yên xwedankitêb got: Bi ya ku ji bo bawermendan hatiye hinartin serê rojê baweriyê bînin û dawiya rojê jî wê înkar bikin. Da (bi vî awayî) ew (ji dînê xwe) vegerin.

73- (Cihûyan ji hev re gotin:) Hûn bes ji yê ku li ser dînê we be bawerî pê bînin -(Ji wan re) bibêje: Hemin rêka rast û durist rêka Xwedê yeda ku tiştê ji bo we hatî dayîn ji kesekî din re neyê dayîn û da ku li cem Xwedê we şermezar û bêdelîl neêxin. Bibêje: Dayîn û kerem bi destê Xwedê ye, Ew kê bivê dide wî. Teqez Xwedê Teala (bi kerem û dayîna xwe) destfireh û zana ye.

74- Xwedê, kê bivê ji dilovaniya xwe re terxan dike (wî dike pêxember). Xwedê Teala xwediyê kerema mezin e.

75- Ji xweykitêban hin hene ku tu bi baran pertal bispêrî wan dê bidin te û hinek jî hene ku tu dînarekî bispêrî wan, eger tu li ser wan ne çavdêr bî, ew wî nadin te. Lewra ew dibêjin: Di xwarina malên naxwendeyan de (mexsed pê ereb in) ji me re guneh nîn e. Ew li ser (navê) Xwedê Teala derewan dikin, digel ku dizanin ew ne rast in jî.

76- Na (ya ku ew dibêjin, ne rast e), kî soza xwe bîne cih û xwe ji heramiyê biparêze, bila bizanibe ku Xwedê Teala ji teqwadaran hez dike.

Li gorî ji Eşes kurê Qeys hatiye ragihandin ku wiha gotiye: Di navbera min û zilamekî cihû de erdek hebû. (Min jê xwest) wî înkar kir. Êdî min ew bir bal pêxember (ji bo ku me ji hev safî bike) Pêxember ji min re got: Delîleke te heye (ku ev erd yê te ye)? Min got: Na! Vêca ji yê cihû re got: Sond bixwe (ku ev erd yê te ye)? Vêca min got: Naxwe ewê sond bixwe û malê min yê ji xwe re bibe? Ji bo vê yekê ev ayet nazil bû: Qurtûbî 4/120

77- Bêguman ew ên ku soza bi Xwedê re dane û sondên xwe bi pertalekî hindik difiroşin; ev ên ha, ji bo wan li axretê tu par û pişk tune ye. Xwedê Teala, roja qiyametê bere xwe nade wan, bi wan re napeyive, wan (ji gunehan) paqij nake û ji bo wan her ezabekî dijwar heye!

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ

يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ اتَّقُوا رَبَّكُمُ الَّذ۪ي خَلَقَكُمْ مِنْ نَفْسٍ وَاحِدَةٍ وَخَلَقَ
مِنْهَا زَوْجَهَا وَبَثَّ مِنْهُمَا رِجَالًا كَث۪يرًا وَنِسَٓاءًۚ وَاتَّقُوا اللّٰهَ الَّذ۪ي
تَسَٓاءَلُونَ بِه۪ وَالْاَرْحَامَۜ اِنَّ اللّٰهَ كَانَ عَلَيْكُمْ رَق۪يبًا ﴿١﴾ وَاٰتُوا الْيَتَامٰٓى
اَمْوَالَهُمْ وَلَا تَتَبَدَّلُوا الْخَب۪يثَ بِالطَّيِّبِۖ وَلَا تَأْكُلُٓوا اَمْوَالَهُمْ اِلٰٓى
اَمْوَالِكُمْۜ اِنَّهُ كَانَ حُوبًا كَب۪يرًا ﴿٢﴾ وَاِنْ خِفْتُمْ اَلَّا تُقْسِطُوا فِي الْيَتَامٰى
فَانْكِحُوا مَا طَابَ لَكُمْ مِنَ النِّسَٓاءِ مَثْنٰى وَثُلٰثَ وَرُبَاعَۚ فَاِنْ خِفْتُمْ
اَلَّا تَعْدِلُوا فَوَاحِدَةً اَوْ مَا مَلَكَتْ اَيْمَانُكُمْۜ ذٰلِكَ اَدْنٰٓى اَلَّا تَعُولُواۜ
﴿٣﴾ وَاٰتُوا النِّسَٓاءَ صَدُقَاتِهِنَّ نِحْلَةًۜ فَاِنْ طِبْنَ لَكُمْ عَنْ شَيْءٍ مِنْهُ نَفْسًا
فَكُلُوهُ هَن۪يٓـًٔا مَر۪يٓـًٔا ﴿٤﴾ وَلَا تُؤْتُوا السُّفَهَٓاءَ اَمْوَالَكُمُ الَّت۪ي جَعَلَ اللّٰهُ
لَكُمْ قِيَامًا وَارْزُقُوهُمْ ف۪يهَا وَاكْسُوهُمْ وَقُولُوا لَهُمْ قَوْلًا مَعْرُوفًا
﴿٥﴾ وَابْتَلُوا الْيَتَامٰى حَتّٰٓى اِذَا بَلَغُوا النِّكَاحَۚ فَاِنْ اٰنَسْتُمْ مِنْهُمْ رُشْدًا
فَادْفَعُٓوا اِلَيْهِمْ اَمْوَالَهُمْۚ وَلَا تَأْكُلُوهَٓا اِسْرَافًا وَبِدَارًا اَنْ يَكْبَرُواۜ
وَمَنْ كَانَ غَنِيًّا فَلْيَسْتَعْفِفْۚ وَمَنْ كَانَ فَق۪يرًا فَلْيَأْكُلْ بِالْمَعْرُوفِۜ
فَاِذَا دَفَعْتُمْ اِلَيْهِمْ اَمْوَالَهُمْ فَاَشْهِدُوا عَلَيْهِمْۜ وَكَفٰى بِاللّٰهِ حَس۪يبًا ﴿٦﴾

لِلرِّجَالِ

## SÛREYÊ NÎSA

Sûreyê Nîsa, 176 (sed û heftê û şeş) ayet e. Piştî hicretê li Medînê nazi bûye. Sûreyê Nîsa tije hukmên Şerîetê ye ku karûbarên mislimanan ên navxweyî û derveyî dirêsin û rêz dikin. Sûre, bi girîngî li ser aliyê hiqûqî sekiniye. Nexasim li ser mafê jinê rawestiyaye; behsa malbatê, jinê, malê, dewletê û civatê kiriye. Sûre, bi piranî li ser hiqûqê jin û sêwiyan - nemaze ku sêwî keç be- rawestiyaye. Hiqûqê jinê, ji mîrasê, qezenc û zewacê daye qebûlkirin. Jinê ji tundekarî û jêgireyên sitemkarî yên kufr û cahiliyetê rizgar kiriye.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

1- Hey gelî mirovan! Hûn ji Xwedayê xwe (bi pêkanîna fermanên wî) xwe biparêzin, ew Xwedayê ku hûn ji yek nefsê afirandine (ku nefsa Adem e), hevjîna wî jî ji cinsê wî afirand û ji her duyan jî gelek mêr û jin zêde kirin. Hay ji (emr û nehyên) Xweda hebin, ew ê ku hûn bi xatirê wî ji hev dixwazin û hay ji pêkanîna mafê lêziman (eqrebeyan) jî hebin (ku hûn bi paş guhê xwe ve neavêjin). Bêguman Xwedê teqez li ser we zêrevan e.

2- Malê sêwiyan (piştî ku balix bûn) bidin wan û malên wan ên baş bi yên xwe yên nebaş neguherînin, malên xwe tevî malên wan nekin û nexwin; bêguman ev gunehekî mezin e.

3- Eger der barê keçên sêwî de (dema hûn bi wan re bizewicin) hûn edaletê pêk neyînin, wê gavê ji jinên ku li xweşa we bên; didu, sisê û çaran bi jinanî ji xwe re bînin. Eger hûn bitirsin ku (di nav wan de) edaletê pêk neyînin; wê gavê bila yek be yan jî cariyeyên ku milkên we ne, ew besî we ne. Ev a hanê ji bo ku hûn ji edaletê cuda nebin ya herî munasib e.

4- (Gelî mêran!) Mehra jinan bi ciwanmêrî bidin wan. Eger ew bi (rizaya) dilê xwe hinekî ji wê mehra xwe bidin we, wê çaxê bi noşîcanî bixwin.

5- (Gelî weliyan!) Malê kesên kêmhiş, dîn û destbelav ên ku Xwedê hûn ji wan re kirine berpirsyar, nedine wan (malên wan wiha bi dest wan ve bernedin ku bi serbestî tê de tevbigerin); bi wî malî wan xwedî bikin û bi cil û berg bikin û ji wan re gotina xweş bibêjin.

6- Sêwiyan (di bin destê xwe de) biceribînin (ka ew dikarin di malê xwe de teserufatiyê bikin yan na) heyanî ku bigihîjin temenê zewacê, êdî eger hûn bi hişmendiya wan dilgerm bibin vêca malên wan bispêrine wan. (Gelî weliyan!) Bi destbelavî û ji tirsa ku sêwî zû mezin bibin û ewên malên xwe ji we bistînin, malên wan nexwin! Bila weliyê ku zengîn be xwe ji malên wan dûr bigire, yê ku xizan be jî, bila bi qasî pêdiviya xwe jê bixwe. Dema we malên wan dan wan, li serê du şahidan rakin. Xwedê ji aliyê hesabpirsînê ve besî we ye.

لِلرِّجَالِ نَصِيبٌ مِمَّا تَرَكَ الْوَالِدَانِ وَالْاَقْرَبُونَۖ وَلِلنِّسَٓاءِ
نَصِيبٌ مِمَّا تَرَكَ الْوَالِدَانِ وَالْاَقْرَبُونَ مِمَّا قَلَّ مِنْهُ اَوْ كَثُرَۜ
نَصِيبًا مَفْرُوضًا ﴿٧﴾ وَاِذَا حَضَرَ الْقِسْمَةَ اُولُوا الْقُرْبٰى
وَالْيَتَامٰى وَالْمَسَاكِينُ فَارْزُقُوهُمْ مِنْهُ وَقُولُوا لَهُمْ قَوْلًا
مَعْرُوفًا ﴿٨﴾ وَلْيَخْشَ الَّذِينَ لَوْ تَرَكُوا مِنْ خَلْفِهِمْ ذُرِّيَّةً
ضِعَافًا خَافُوا عَلَيْهِمْۖ فَلْيَتَّقُوا اللّٰهَ وَلْيَقُولُوا قَوْلًا سَدِيدًا ﴿٩﴾
اِنَّ الَّذِينَ يَأْكُلُونَ اَمْوَالَ الْيَتَامٰى ظُلْمًا اِنَّمَا يَأْكُلُونَ فِي
بُطُونِهِمْ نَارًاۜ وَسَيَصْلَوْنَ سَعِيرًا ﴿١٠﴾ يُوصِيكُمُ اللّٰهُ فِٓي
اَوْلَادِكُمْ لِلذَّكَرِ مِثْلُ حَظِّ الْاُنْثَيَيْنِۚ فَاِنْ كُنَّ نِسَٓاءً فَوْقَ
اثْنَتَيْنِ فَلَهُنَّ ثُلُثَا مَا تَرَكَۚ وَاِنْ كَانَتْ وَاحِدَةً فَلَهَا النِّصْفُۜ
وَلِاَبَوَيْهِ لِكُلِّ وَاحِدٍ مِنْهُمَا السُّدُسُ مِمَّا تَرَكَ اِنْ كَانَ لَهُ
وَلَدٌۚ فَاِنْ لَمْ يَكُنْ لَهُ وَلَدٌ وَوَرِثَهُٓ اَبَوَاهُ فَلِاُمِّهِ الثُّلُثُۚ فَاِنْ
كَانَ لَهُٓ اِخْوَةٌ فَلِاُمِّهِ السُّدُسُ مِنْ بَعْدِ وَصِيَّةٍ يُوصِي بِهَٓا
اَوْ دَيْنٍۜ اٰبَٓاؤُ۬كُمْ وَاَبْنَٓاؤُ۬كُمْۚ لَا تَدْرُونَ اَيُّهُمْ اَقْرَبُ
لَكُمْ نَفْعًاۚ فَرِيضَةً مِنَ اللّٰهِۜ اِنَّ اللّٰهَ كَانَ عَلِيمًا حَكِيمًا ﴿١١﴾

7- Ji mîrateya ku dê û bav û lêziman li pey xwe hiştine, ji mêran re parek heye û ji bo jinan jî, ji mîrateya ku dê û bav û lêziman li pey xwe hiştine parek heye. Ji malê mîratê çi hindik be çi pir (ji wêrtên jin û mêr re) pareke misogerkirî heye.

8- Dema nêz û lêzim, yên sêwî û belengaz (ew ên ku ne waris in) li ser parvekirina mîrateyê hazir bibin, vêca berî parvekirina malê mîratê, hinekî jê bidine wan û ji wan re peyveke xweş bibêjin.

Îslamiyetê, ji bo palpiştî û dada civatî pêk bîne û biratiya însanî û hevdostiyê misoger bike; parek daye xizm, sêwî û belengazên dûr da ku çavnebariyê ji xizmên xwe nekin û ji bo ku hest û hisên bi kîn bikuje û dilê wan jî razî bike.

9- Ew ên ku eger (bimirin û) li dûv xwe zarokine jar û bêçare bihêlin û ji (ber zilma weliyê nebaş) ji windabûna (mafên) wan bitirsin, bila (ew ji neheqiya li sêwiyan) bitirsin. Vêca bila (der barê sêwiyan de hukmê) Xwedê biparêzin û bila gotineke di cihê xwe de bibêjin (yanî ji yê li ber mirinê re bibêjin: Malê xwe zêdeyî sêyekê wesiyet neke û mîratxwerên xwe li dûv xwe xizan û reben nehêle).

10- Bêguman ew ên ku bi neheqî malên sêwiyan dixwin, bes ew zikê xwe ji êgir tije dikin û paşê ew ê bikevin agirê sincirî.

11- Xwedê Teala, der barê zarokên we de li we ferman dike ku ji mîratê, ji kuran re bi qasî para du keçan heye. Eger mîratxwer tev keç bin, (du keç yan) di ser duyan re bin, vêca ji siseyan duyê mîratê ji wan re ye. Eger keçek be nîvê mîratê jê re ye. Ji dê û bavê mirî re jî, eger zarokên wî hebin ji bo her yekî ji dê û bavê wî re şeşyek heye. Êdî eger zarokên wî nebin û dê û bavê wî bibine mîratxwerê wî vêca ji bo dayîka wî sêyek heye û eger xwişk û birayên wî hebin îcar ji bo dayîka wî şeşyek heye. (Ev parvekirin tev) piştî pêkanîna wesiyeta kesê mirî û piştî dana deynên wî ye. Dê û bavên we û zaroyên we, hûn nizanin kîjan ji we re bifeydetir in. (Ev parvekirin) ji aliyê Xwedê ve wiha hatiye ferzkirin. Bêguman Xwedê zanayê bi mexlûqê xwe ye û karbinecihê di karê xwe de ye.

وَلَكُمْ نِصْفُ مَا تَرَكَ اَزْوَاجُكُمْ اِنْ لَمْ يَكُنْ
لَهُنَّ وَلَدٌ فَاِنْ كَانَ لَهُنَّ وَلَدٌ فَلَكُمُ الرُّبُعُ مِمَّا
تَرَكْنَ مِنْ بَعْدِ وَصِيَّةٍ يُوصِينَ بِهَا اَوْ دَيْنٍ وَلَهُنَّ
الرُّبُعُ مِمَّا تَرَكْتُمْ اِنْ لَمْ يَكُنْ لَكُمْ وَلَدٌ فَاِنْ
كَانَ لَكُمْ وَلَدٌ فَلَهُنَّ الثُّمُنُ مِمَّا تَرَكْتُمْ مِنْ بَعْدِ
وَصِيَّةٍ تُوصُونَ بِهَا اَوْ دَيْنٍ وَاِنْ كَانَ رَجُلٌ
يُورَثُ كَلَالَةً اَوِ امْرَاَةٌ وَلَهُ اَخٌ اَوْ اُخْتٌ فَلِكُلِّ
وَاحِدٍ مِنْهُمَا السُّدُسُ فَاِنْ كَانُوا اَكْثَرَ مِنْ ذٰلِكَ
فَهُمْ شُرَكَاءُ فِى الثُّلُثِ مِنْ بَعْدِ وَصِيَّةٍ يُوصٰى
بِهَا اَوْ دَيْنٍ غَيْرَ مُضَارٍّ وَصِيَّةً مِنَ اللّٰهِ وَاللّٰهُ
عَلِيمٌ حَلِيمٌ ﴿١٢﴾ تِلْكَ حُدُودُ اللّٰهِ وَمَنْ يُطِعِ اللّٰهَ
وَرَسُولَهُ يُدْخِلْهُ جَنَّاتٍ تَجْرِى مِنْ تَحْتِهَا
الْاَنْهَارُ خَالِدِينَ فِيهَا وَذٰلِكَ الْفَوْزُ الْعَظِيمُ
﴿١٣﴾ وَمَنْ يَعْصِ اللّٰهَ وَرَسُولَهُ وَيَتَعَدَّ حُدُودَهُ
يُدْخِلْهُ نَارًا خَالِدًا فِيهَا وَلَهُ عَذَابٌ مُهِينٌ ﴿١٤﴾

وَالّٰتى

Îslamê, di hiqûqa parvekirina mîrasê de li gorî binbarî û pêşniyaran pişka mêr û jinê daye wan û di neqeba wan de ahengsazî pêk aniye; pir daye yê ku pêwîst e zehf xerc bike û hindik daye yê ku dê kêm xerc bike. Li gorî hiqûqê îslamê yê malbatî, kesê ku dema bixwaze bizewice divê mesrefa dawetê mêr bide û mehra jinê jî ew bide. Piştî jinanînê jî, mêr dîsa divê ew li xizmên xwe yên muhtac û jin û zarokên xwe binêre; xwarina wan, cilên wan, xaniyê wan û dermanên wan temîn bike. Ji ber van sedeman îslamê bi qasî para du jinan pay daye mêran.

**12**- (Gelî mêran!) Piştî pêkanîna wesiyeta wan û dayîna deynên wan, ji mîrateya ku ji jinên we maye, eger zarokên wan tune bin, nîvî ya we ye. Eger zarokên wan hebin vêca çaryeka mîrateya ku li pey xwe hiştine ji we re ye. Ji bo jinên we jî çaryeka mîrateya ku we li pey xwe hiştiye heye, eger ku zarokên we nebin. Vêca eger zaroyên we hebin nexwe ji bo wan heştyeka mîrateya ku we li pey xwe hiştiye heye, ev jî piştî pêkanîna qewîtiya we û piştî dayîna deynê we ye. Eger mêrek bi kelaletî (bêdûndan) mîrateyê li pey xwe bihêle; yan jinek bi vî awayî mîrateyê li pey xwe bihêle û ji bo her yekî ji her duyan birayek yan jî xwişkek hebe, vêca ji bo her yekî ji wan şeşyek heye. Êdî eger xwişk û bira ji yekî pirtir bin vêca ew di sêyekê de pişkdar in. Ev jî piştî pêkanîna qewîtiya bêzerar (ya ku zerara wê nede warisan) û piştî dayîna deynê wan e. Ev fermana Xwedê ye li ser we. Xwedê zana ye, berbihêr e.

Bêjeya "**Kelale**" di du cihên Qur'ana Pîroz de derbas bûye, yek ji wan ev e ku piştî mirina wî/wê bav û zaro jê nemênin.

**13**- Ew sînorên Xwedê ne, kî ku bi ya Xwedê û pêxemberê wî bike, dê wî bixe bihiştên ku çem di bin wan re diherikin ku dê heta hetayê tê de bimînin. Ha ev e serfiraziya mezin.

**14**- Kî jî ku bêemriya Xwedê û pêxemberê wî bike û ji sînorên wî derbas bibe, dê wî têxe agirekî ku tê de seraqetî bimîne û muheqeq jê re ezabekî riswaker heye.

وَالّٰت۪ي يَأْت۪ينَ الْفَاحِشَةَ مِنْ نِسَٓائِكُمْ فَاسْتَشْهِدُوا عَلَيْهِنَّ
اَرْبَعَةً مِنْكُمْۚ فَاِنْ شَهِدُوا فَاَمْسِكُوهُنَّ فِي الْبُيُوتِ
حَتّٰى يَتَوَفّٰيهُنَّ الْمَوْتُ اَوْ يَجْعَلَ اللّٰهُ لَهُنَّ سَب۪يلًا ﴿١٥﴾
وَالَّذَانِ يَأْتِيَانِهَا مِنْكُمْ فَاٰذُوهُمَاۚ فَاِنْ تَابَا وَاَصْلَحَا
فَاَعْرِضُوا عَنْهُمَاۜ اِنَّ اللّٰهَ كَانَ تَوَّابًا رَح۪يمًا ﴿١٦﴾
اِنَّمَا التَّوْبَةُ عَلَى اللّٰهِ لِلَّذ۪ينَ يَعْمَلُونَ السُّٓوءَ بِجَهَالَةٍ
ثُمَّ يَتُوبُونَ مِنْ قَر۪يبٍ فَاُو۬لٰٓئِكَ يَتُوبُ اللّٰهُ عَلَيْهِمْۜ
وَكَانَ اللّٰهُ عَل۪يمًا حَك۪يمًا ﴿١٧﴾ وَلَيْسَتِ التَّوْبَةُ لِلَّذ۪ينَ
يَعْمَلُونَ السَّيِّـَٔاتِۚ حَتّٰٓى اِذَا حَضَرَ اَحَدَهُمُ الْمَوْتُ قَالَ
اِنّ۪ي تُبْتُ الْـٰٔنَ وَلَا الَّذ۪ينَ يَمُوتُونَ وَهُمْ كُفَّارٌۜ اُو۬لٰٓئِكَ
اَعْتَدْنَا لَهُمْ عَذَابًا اَل۪يمًا ﴿١٨﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا لَا يَحِلُّ
لَكُمْ اَنْ تَرِثُوا النِّسَٓاءَ كَرْهًاۜ وَلَا تَعْضُلُوهُنَّ لِتَذْهَبُوا
بِبَعْضِ مَٓا اٰتَيْتُمُوهُنَّ اِلَّٓا اَنْ يَأْت۪ينَ بِفَاحِشَةٍ مُبَيِّنَةٍۚ
وَعَاشِرُوهُنَّ بِالْمَعْرُوفِۚ فَاِنْ كَرِهْتُمُوهُنَّ فَعَسٰٓى
اَنْ تَكْرَهُوا شَيْـًٔا وَيَجْعَلَ اللّٰهُ ف۪يهِ خَيْرًا كَث۪يرًا ﴿١٩﴾

**15**- Ji jinên we yên ku zînayê dikin, çar şahidan ji xwe (ji mêrên misliman) li ser wan rakin, vêca eger wan li ser wan şahdeyî da; heta ku mirina wan bê yan jî heta Xwedê ji wan re riyeke çareseriyê veke, wan di malên wan de girtî bihêlin.

**16**- Ji nav we ew jin û mêrên ku zinayê dikin, (bi gotinan) eziyetê bidin wan; eger poşman bibin û xwe rast bikin, êdî dest ji eziyeta wan berdin. Bêguman Xwedê tobepejrên e, dilovîn e.

Ev her du ayetên pîroz di bara fihûşê/zinayê de ne. Li gorî pirên tefsîrzanan her du jî xasê zinayê ne ku di awayê fihûşê de ye. Ayeta yekem cezayê zinaya yên zewicî û ayeta duyem jî cezayê zinaya nezewiciyan ya ku di pêşiya îslamê de dihat tetbîqkirin, eşkere dike. Piştre bi daketina ayeta sûreyê "en-Nûr" ya duyem û bi hedîsa li gorî kirinên Pêxember (s) yên kiryarî ev ayet nesix bûne, cezayê zinaya aziban sed çov e, cezayê zinaya zewiciyan jî recm e. Li gorî hin tefsîrzanan jî ev ayet nesix nebûne, ayeta yekem xasê xirabiya jinan a bi jinan e. Ayeta duyem xasê xirabiya mêran a bi mêran re ye. Cizayê van her du xirabiyan eynî fena di ayetan de hatiye diyarkirin, berdewam e. Zinaya mêr û jinan bi hev re, cezayê wê di Sûreyê en-Nûr de hatiye eşkerekirin.

**17**- Bêguman ew tobeya ku tê wergirtin û pejirandin, bes tobeya wan ên ku ji nezanîn ve gunehan dikin û piştre jî di demeke nêzîk de (poşman dibin û) tobe dikin; ha Xwedê tobeya wan qebul dike. Xwedê zana ye, karbinecih e.

**18**- Pejirandina tobeyê ne ji bo wan ên ku xerabî û gunehan dikin (û li serê berdewam in) heyanî yek ji wan dikeve ber mirinê, êdî (ji nû ve) dibêje: "Min vêga tobe kir" û ne ji bo wan ên ku li ser kufrê jî dimirin. Ev ên wisa, me ji bo wan ezabekî cansoj amade kiriye.

**19**- Hey gelî yên ku bawerî anîne! Ji we re ne helal e ku hûn bi kotekî bibin mîratxwerê jinan û ji bo we ne helal e ku hûn wan tengezar bikin (û nehêlin ku ew bizewicin) da ku mehra we daye wan hûn ji wan bistînin. Lê ku tolaziyeke aşkera bikin ew tiştekî din e. Bi wan re xweş bibuhêrin. Vêca eger hûn ji wan bêzar bin; (sebrê bikêşin û wê bernedin), êdî dibe ku hûn tiştekî nevên û Xwedê ji bo we xêr û bêreke pir têxê.

Berî Îslamiyetê, di civata Erebistanê de tu nirxê jinê tunebû. Li gorî ereban jin pertal bû, pê re muameleyeke neçê dikirin. Gava mêrê jinê dimir ew ji mîratxwerên wî re dima. Çendan wê neva jî li xwe mehr dikir, yan jî mehra wê distand û li yekî din mehr dikir. Jin dida xebitandin û jê menfîet bi dest dixist. Vê ayetê ev neheqî bi dawî kir û jin kire xwediyê maf û rûmetê.

وَاِنْ اَرَدْتُمُ اسْتِبْدَالَ زَوْجٍ مَكَانَ زَوْجٍۙ وَاٰتَيْتُمْ
اِحْدٰيهُنَّ قِنْطَارًا فَلَا تَأْخُذُوا مِنْهُ شَيْـًٔاۜ اَتَأْخُذُونَهُ
بُهْتَانًا وَاِثْمًا مُب۪ينًا ﴿٢٠﴾ وَكَيْفَ تَأْخُذُونَهُ وَقَدْ اَفْضٰى
بَعْضُكُمْ اِلٰى بَعْضٍ وَاَخَذْنَ مِنْكُمْ م۪يثَاقًا
غَل۪يظًا ﴿٢١﴾ وَلَا تَنْكِحُوا مَا نَكَحَ اٰبَٓاؤُ۬كُمْ مِنَ النِّسَٓاءِ
اِلَّا مَا قَدْ سَلَفَۜ اِنَّهُ كَانَ فَاحِشَةً وَمَقْتًاۜ وَسَٓاءَ
سَب۪يلًا ﴿٢٢﴾ حُرِّمَتْ عَلَيْكُمْ اُمَّهَاتُكُمْ وَبَنَاتُكُمْ
وَاَخَوَاتُكُمْ وَعَمَّاتُكُمْ وَخَالَاتُكُمْ وَبَنَاتُ الْاَخِ
وَبَنَاتُ الْاُخْتِ وَاُمَّهَاتُكُمُ الّٰت۪ٓي اَرْضَعْنَكُمْ
وَاَخَوَاتُكُمْ مِنَ الرَّضَاعَةِ وَاُمَّهَاتُ نِسَٓائِكُمْ
وَرَبَٓائِبُكُمُ الّٰت۪ي ف۪ي حُجُورِكُمْ مِنْ نِسَٓائِكُمُ
الّٰت۪ي دَخَلْتُمْ بِهِنَّۘ فَاِنْ لَمْ تَكُونُوا دَخَلْتُمْ بِهِنَّ
فَلَا جُنَاحَ عَلَيْكُمْۘ وَحَلَٓائِلُ اَبْنَٓائِكُمُ الَّذ۪ينَ
مِنْ اَصْلَابِكُمْۙ وَاَنْ تَجْمَعُوا بَيْنَ الْاُخْتَيْنِ اِلَّا
مَا قَدْ سَلَفَۜ اِنَّ اللّٰهَ كَانَ غَفُورًا رَح۪يمًاۙ ﴿٢٣﴾



**20-** Eger we dil hebe ku jinekê berdin û di şûna wê de jineke din bînin û we malekî pir (bi navê mehrê) dabiyê, vêca ji wî malî tiştekî nestînin. Hûn ê çawa wî malî bi bêbextî û gunehkariyeke aşkera jê bistînin?!

Gava mêr bizewice divê hin mal bide jina xwe ku navê wê **mehr** e. Miqdarê mehrê li gorî urf, adet û yên weke wê tê teyînkirin. Mehr, heqê jinê ye, malê wê yê taybetî ye. Heke mehra jinê pêşîn nehatibe dayîn, gava mêrê wê mir derhal divê bê dayîn. Hîç ne helal e û mafê mêran tun e ku bi hîle û saxtekarî mehrê tevî yan hinekî ji jinê bistînin. Di ayetê de **qintar** derbas bûye ku miqdarê wê "44,928 gr." e. Mebest jê malekî pir e. Di heyama Xelîfetiya Îmam Umer de mehra jinê pir zêde bûye. Vêca Umer li ser minberê wiha got: Gelî mirovan! Mehra jinan pir zêde nekin. Heke pir mehrdayîn li dinyayê camêrî bûya yan jî li cem Xwedê teqwa bûya ji we bêhtir diviyabû Pêxemberê Xwedê ew zêde bikira û bidaya. (Lêbelê em dizanin ku) wî zêdeyî diwanzdeh ûqiye mehra yekê ji xanimên xwe û keçên xwe nebirriye. Li ser vê yekê ji nav cemaetê jinek rabû ser xwe û got: Hey Umer! Xweda dide me lê tu ji me re heram dikî. Ew dibêje: "Heke we qentarek mal dabe yekê ji wan jî". Vêca em dê li pey gotina te herin yan jî li pey gotina Xwedê herin? Vêca Umerî got: Jinikê rast got û Umerî şaş kir! Her kes ji Umer zanatir e. Hûn bi kêfa xwe ne. Hûn çiqasî bixwazin mehra jinan bidin, bidin wan û bizewicin.

**21-** Ma çawa hûn ê (mehrê) ji wan bistînin, digel ku hûn çûne nivîna wan û wan ji we peymaneke qewîn (peymana zewacê) jî wergirtiye.

**22-** Hûn wan jinên ku bavên we ew mehr kiribin wan mehr nekin (bi wan re nezewicin), ji bilî ya ku beriya vî hukmî pêk hatibe (ew tê efûkirin). Bêguman ev karekî zêde kirêt, hêrslêbûyî û çi pîserê ye (ku mirov pê de diçûn).

Ev ayeta pîroz adeteke din, ya ereban a kirêt û erjeng ji rewacê radike û piştî re jinên ku mehra wan ne helal û ne durust e ji mislimanan re radigihîne.

**23-** Dayîkên we, keçên we û xwişkên we, metên we û xaltîkên we, keçên bira û keçên xwişkên we, dayîkên we yên şîr û xwişkên we yên ji şîr, dayîkên jinên we û keçhiliyên we yên di malên we de ku hûn çûne nivînên dayîkên wan -êdî eger hûn neçûbin nivînên dayîkên wan tu guneh li ser we nîn e ku hûn wan li xwe mehr bikin- û jinên kurên we yên ji pişta we û ku hûn ji xwe re bi jinanî du xwişkan bînin cem hev, li we hatine qedexekirin. Lê tiştê ku beriya vê fermanê borî ew li we nayê girtin. Bêguman Xwedê teqez bexşînerê gunehan e, dilovîn e.

وَالْمُحْصَنَاتُ مِنَ النِّسَٓاءِ اِلَّا مَا مَلَكَتْ اَيْمَانُكُمْۚ كِتَابَ
اللّٰهِ عَلَيْكُمْۚ وَاُحِلَّ لَكُمْ مَا وَرَٓاءَ ذٰلِكُمْ اَنْ تَبْتَغُوا
بِاَمْوَالِكُمْ مُحْصِن۪ينَ غَيْرَ مُسَافِح۪ينَۜ فَمَا اسْتَمْتَعْتُمْ بِه۪
مِنْهُنَّ فَاٰتُوهُنَّ اُجُورَهُنَّ فَر۪يضَةًۜ وَلَا جُنَاحَ عَلَيْكُمْ
ف۪يمَا تَرَاضَيْتُمْ بِه۪ مِنْ بَعْدِ الْفَر۪يضَةِۜ اِنَّ اللّٰهَ كَانَ
عَل۪يمًا حَك۪يمًا ﴿٢٤﴾ وَمَنْ لَمْ يَسْتَطِعْ مِنْكُمْ طَوْلًا اَنْ
يَنْكِحَ الْمُحْصَنَاتِ الْمُؤْمِنَاتِ فَمِنْ مَا مَلَكَتْ اَيْمَانُكُمْ
مِنْ فَتَيَاتِكُمُ الْمُؤْمِنَاتِۜ وَاللّٰهُ اَعْلَمُ بِا۪يمَانِكُمْۜ
بَعْضُكُمْ مِنْ بَعْضٍۚ فَانْكِحُوهُنَّ بِاِذْنِ اَهْلِهِنَّ وَاٰتُوهُنَّ
اُجُورَهُنَّ بِالْمَعْرُوفِ مُحْصَنَاتٍ غَيْرَ مُسَافِحَاتٍ
وَلَا مُتَّخِذَاتِ اَخْدَانٍۚ فَاِذَٓا اُحْصِنَّ فَاِنْ اَتَيْنَ بِفَاحِشَةٍ
فَعَلَيْهِنَّ نِصْفُ مَا عَلَى الْمُحْصَنَاتِ مِنَ الْعَذَابِۜ ذٰلِكَ
لِمَنْ خَشِيَ الْعَنَتَ مِنْكُمْۜ وَاَنْ تَصْبِرُوا خَيْرٌ لَكُمْۜ وَاللّٰهُ
غَفُورٌ رَح۪يمٌ ﴿٢٥﴾ يُر۪يدُ اللّٰهُ لِيُبَيِّنَ لَكُمْ وَيَهْدِيَكُمْ سُنَنَ
الَّذ۪ينَ مِنْ قَبْلِكُمْ وَيَتُوبَ عَلَيْكُمْۜ وَاللّٰهُ عَل۪يمٌ حَك۪يمٌ ﴿٢٦﴾

**24-** (Mehrkirina) jinên bimêr (çendî mêrên wan kafir bin jî) li we heram e, ji bilî yên ku (di xezayê de) ji bo we bûne cariye (vêca eger cêrî digel mêrê xwe be, heyanî mêrê wê nemire yan wê bernede dîsa li xwediyê xwe ne helal e). Ev fermana Xwedê ye li ser we hatiye nivîsîn (mafê tu kesî nîn e bide ser). Ji bilî van; eger hûn bi malên xwe, di çarçoveya namûsê de, ne bi zinakarî (wan mehr bikin) ji bo we helal in. Vêca ji wan heçî ya ku hûn bi çûna nivîna wan xweş bûne, mehra wan (a we ji hev re kifşkirî) ku li ser we ferz e bidine wan. Piştî mehra ku hatî kifşkirin, eger hûn (di nav xwe de) li hev bên û hinekî jê kêm bikin (di vê de) li ser we tu guneh tune ye. Bêguman Xwedê (di kar û barê xwe de) zana ye, karbinecih e.

> Di hiqûqê hin olan de, jin hin mal dide mêrê ku pê re bizewice da ku mêran teşwîqî ser zewaca xwe bike. Îslamê ev kultura pûç ji holê rakiriye. Li gorî Îslamê, ji ber ku jin bi xwe bi nirx û bi rûmet e, çavê mêr ne li malê wê ye. Lê belê çav li wê bi xwe ye. Naxwe mêrê ku bi jinê re dizewice divê hin mal bide jinê, navê wî malê ku didiyê **Mehr** e.

**25-** Ji we, ew kesê ku ji desttengî nikare jineke azad û bawermend mehr bike, bila qerwaşekê ji wan keçên we yên bawermend ku di binê destê we de ne mehr bike. Xwedê bêhtir bi baweriya we dizane. Hûn tev (di dîn de) wekhev in. Naxwe qerwaşan bi destûra xwediyên wan mehr bikin, bi rindî mehra wan bidin wan, bi jinanî; ne bi zinayê û ne bi dostikî bi wan re bizewicin. Êdî piştî zewacê eger zinayê bikin nîvê cezayê jina azad li wan tê xistin. Ev (destûra zewacê ya bi qerwaşan re) ji we, ji bo wî kesî ye ku ji kirina zinayê bitirse. Eger hûn xwe ragirin (û cariyan mehr nekin) ji we re çêtir e. Xwedê gunehjêbir e, dilovîn e.

> Zina, hemin heram e. Ne rewa ye ku mirovek miqdarek dirav bide jinekê da ku heta demeke mueyyen pê re bimîne. Eger zilamek bi yarîtî yan jî bi peran bi jinekê re bijî ew jî zina ye. Mislimanek eger pêdiviya wî bi zewacê hebe, vêca derfetên wî jî hebin divê jineke bawermend û azad mehr bike; lê destûr heye ku jineke azad ji xristiyan û cihûyan jî mehr bike. Eger nikaribe bi jineke azad re bizewice, bila bi cariyeyeke bawermend re bizewice, eger ew jî nebe bi cariyeyeke ehlê kitêb re bizewice. Lêbelê eger ku cariye ya yekî din be, hin xeterên wê hene. Ji loma heke bi cariyeyê re nezewice, sebrê bikêşe, heta ku derfetên wî çêbibin û piştre bi jineke azad û mumîne re bizewice jê re çêtir e.

**26-** Xwedê dixwaze (helal û heraman) ji we re aşkera bike, riya wan (pêxember û qenc)ên beriya we nîşanî we bide û tobeya we qebûl bike. Xwedê (di kar û barê xwe de) zana ye, karbinecih e.

وَاللّٰهُ يُر۪يدُ اَنْ يَتُوبَ عَلَيْكُمْ وَيُر۪يدُ الَّذ۪ينَ يَتَّبِعُونَ
الشَّهَوَاتِ اَنْ تَم۪يلُوا مَيْلاً عَظ۪يمًا ﴿٢٧﴾ يُر۪يدُ اللّٰهُ اَنْ
يُخَفِّفَ عَنْكُمْۚ وَخُلِقَ الْاِنْسَانُ ضَع۪يفًا ﴿٢٨﴾ يَٓا اَيُّهَا
الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا لَا تَأْكُلُٓوا اَمْوَالَكُمْ بَيْنَكُمْ بِالْبَاطِلِ اِلَّٓا
اَنْ تَكُونَ تِجَارَةً عَنْ تَرَاضٍ مِنْكُمْ وَلَا تَقْتُلُٓوا
اَنْفُسَكُمْۜ اِنَّ اللّٰهَ كَانَ بِكُمْ رَح۪يمًا ﴿٢٩﴾ وَمَنْ يَفْعَلْ
ذٰلِكَ عُدْوَانًا وَظُلْمًا فَسَوْفَ نُصْل۪يهِ نَارًاۜ وَكَانَ
ذٰلِكَ عَلَى اللّٰهِ يَس۪يرًا ﴿٣٠﴾ اِنْ تَجْتَنِبُوا كَبَٓائِرَ مَا
تُنْهَوْنَ عَنْهُ نُكَفِّرْ عَنْكُمْ سَيِّـَٔاتِكُمْ وَنُدْخِلْكُمْ مُدْخَلاً
كَر۪يمًا ﴿٣١﴾ وَلَا تَتَمَنَّوْا مَا فَضَّلَ اللّٰهُ بِه۪ بَعْضَكُمْ عَلٰى
بَعْضٍۜ لِلرِّجَالِ نَص۪يبٌ مِمَّا اكْتَسَبُوا وَلِلنِّسَٓاءِ نَص۪يبٌ
مِمَّا اكْتَسَبْنَۜ وَسْـَٔلُوا اللّٰهَ مِنْ فَضْلِه۪ۜ اِنَّ اللّٰهَ كَانَ
بِكُلِّ شَيْءٍ عَل۪يمًا ﴿٣٢﴾ وَلِكُلٍّ جَعَلْنَا مَوَالِيَ مِمَّا تَرَكَ
الْوَالِدَانِ وَالْاَقْرَبُونَۜ وَالَّذ۪ينَ عَقَدَتْ اَيْمَانُكُمْ فَاٰتُوهُمْ
نَص۪يبَهُمْۜ اِنَّ اللّٰهَ كَانَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ شَه۪يدًاۚ ﴿٣٣﴾

الرِّجَالُ

27- Xwedê dixwaze tobeya we bipejirîne û ew ên ku didin pey hewesên xwe jî dixwazin we ji heqiyê bi bal pûçiyê ve gelekî vegerînin (da ku hûn jî wekî wan ji rê bikevin û dilê wan li we şad bibe).

28- Xwedê dixwaze (barên) we sivik bike; lewra însan qels hatiye afirandin (ku nikare li dijî arezû û hewesên xwe biçe).

Naxwe teklîf û berpirsiyariyên dînî ne bar in, belkî rênîşan in, da ku nehêlin lingên însên di heyata dinyayê de bişemite yan jî bikeve bin barekî ku qeweta wî jê re tune ye.

29- Gelî yên ku bawerî anîne! Ji bazirganiyeke ku we bi dilê hev kiribe pê ve, di navbera xwe de, malên hev bi neheqî (bi rêkên heram) nexwin û (bi kirina gunehan) xwe nekujin. Bêguman Xwedê teqez ji bo we pir birehm e.

30- Kî bi êrîşkarî û bi neheqî vê bike, vêca em ê wî bixin nav êgir. Ev li cem Xwedê hêsan e.

31- Eger hûn xwe ji gunehên mezin ên ku li we hatine qedexekirin biparêzin, em ê li gunehên we yên biçûk biborin û em ê we bixin cihekî (bihişteke) birûmet.

Însan, bi xulqiyeta xwe ne wek melayîketan e. Qabil e ku ew gunehan û xêran jî bikin. Lewra pêwendiya vê bi vîna wan û têkoşîna wan a bi xwe re heye. Heke evd, tişta ku jê were bike, Xwedê Teala gunehên biçûk nade rûyê wî.

32- (Gelî mumînan!) Ew tiştê ku Xwedê we pê di ser hev re girtiye daxwaz nekin. Ji mêran re ji ya ku bi dest xistine parek heye û ji jinan re jî ji ya ku bi dest xwe ve anîne parek heye û ji Xwedê kerema wî bixwazin. Bêguman Xwedê bi her tiştî zana ye.

Însan, bi xulqiyeta xwe ne wek melayîketan e. Qabil e ku ew gunehan û xêran jî bikin. Lewra pêwendiya vê bi vîna wan û têkoşîna wan a bi xwe re heye. Heke evd, tişta ku jê were bike, Xwedê gunehên biçûk nade rûyê.

33- Me her mêr û her jin ji bo tiştê ku dê û bav û lêziman li pişt xwe hiştine kiriye mîratgir. Ewên ku we ew bi sondê bi xwe ve girêdane, vêca para wan ji mîrateya xwe bidine wan. Bêguman Xwedê li ser her tiştî çavdêr e.

Mebest bi wan kesên ku sonda we li ser wan hatiye girêdan ew hevpeyman in ku di heyama berî Îslamê de dema yekî jinek dianî xizmên jinê pê re bazar dikirin ku piştî mirina xwe wan ji xwe re bike mîratxwer, wî jî qebûl dikir. Yan jî yek ew ji xwe re dikir kur û soza mîratxwerî û arîkariyê dida wan. Piştre hukmê vê ayetê bi ayeta Sûreyê el-Enfal, a 75-ê ji rewacê hate rakirin.

اَلرِّجَالُ قَوَّامُونَ عَلَى النِّسَٓاءِ بِمَا فَضَّلَ اللّٰهُ بَعْضَهُمْ
عَلٰى بَعْضٍ وَبِمَٓا اَنْفَقُوا مِنْ اَمْوَالِهِمْ فَالصَّالِحَاتُ
قَانِتَاتٌ حَافِظَاتٌ لِلْغَيْبِ بِمَا حَفِظَ اللّٰهُ وَالّٰت۪ي
تَخَافُونَ نُشُوزَهُنَّ فَعِظُوهُنَّ وَاهْجُرُوهُنَّ فِي الْمَضَاجِعِ
وَاضْرِبُوهُنَّ فَاِنْ اَطَعْنَكُمْ فَلَا تَبْغُوا عَلَيْهِنَّ سَب۪يلًا
اِنَّ اللّٰهَ كَانَ عَلِيًّا كَب۪يرًا ﴿٣٤﴾ وَاِنْ خِفْتُمْ شِقَاقَ بَيْنِهِمَا
فَابْعَثُوا حَكَمًا مِنْ اَهْلِه۪ وَحَكَمًا مِنْ اَهْلِهَا اِنْ يُر۪يدَٓا
اِصْلَاحًا يُوَفِّقِ اللّٰهُ بَيْنَهُمَا اِنَّ اللّٰهَ كَانَ عَل۪يمًا خَب۪يرًا
﴿٣٥﴾ وَاعْبُدُوا اللّٰهَ وَلَا تُشْرِكُوا بِه۪ شَيْـًٔا وَبِالْوَالِدَيْنِ
اِحْسَانًا وَبِذِي الْقُرْبٰى وَالْيَتَامٰى وَالْمَسَاك۪ينِ
وَالْجَارِ ذِي الْقُرْبٰى وَالْجَارِ الْجُنُبِ وَالصَّاحِبِ
بِالْجَنْبِ وَابْنِ السَّب۪يلِ وَمَا مَلَكَتْ اَيْمَانُكُمْ اِنَّ
اللّٰهَ لَا يُحِبُّ مَنْ كَانَ مُخْتَالًا فَخُورًا ﴿٣٦﴾ اَلَّذ۪ينَ
يَبْخَلُونَ وَيَأْمُرُونَ النَّاسَ بِالْبُخْلِ وَيَكْتُمُونَ مَٓا اٰتٰيهُمُ
اللّٰهُ مِنْ فَضْلِه۪ وَاَعْتَدْنَا لِلْكَافِر۪ينَ عَذَابًا مُه۪ينًا ﴿٣٧﴾

34- Bi sedema ku Xwedê hin kes di ser hin kesan re girtine û ji ber ku mêr malên xwe li jinan xerc dikin, mêr nîgahdar û rêvebirê jinan in. Ji ber vê yekê jinên qenc ew in ku ew bi gotina mêrê xwe dikin û di nehaziriya mêrê xwe de malên wan û namûsên xwe diparêzin. (Gelî mêran!) Ew jinên ku hûn ji xeyda wan endîşe dikin, vêca şîret li bikin, (eger neyêne rê) xwe ji nivînên wan dûr bikin, (eger bi vê jî neyên rê) li wan bidin (lê ne bi dijwarî). Eger wan bi ya we kir, êdî li hemberî wan li tu riyên din negerin; bêguman Xwedê bilindşan e, mezinhêz e.

**Di Bara Torekirina Jinê De:** Bi rastî dijminê Îslamê ev yek pir sûîstimal kirine û ji bo xwe kirine navgîn da ku êrîşî Îslamê bikin û bi vê behaneyê îddîa dikin ku; îslamê qedrê jinê negirtiye, rûmet nedayê û şerefa wê neparastiye. Lewra destûr daye mêrî ku lê bide!! Dibêjin ku Qur'anê çilo destûra mêr daye ku li jinê bide? Em dikarin wiha bersiva wan bidin: Belê, rast e. Xwedê destûra mêr daye ku li jinê bide. Lêbelê mêr dê kengî li jinê bide? Lêdan, dê ji bo kê bibe? Weke ku di Hedîsa Şerîf de jî hatiye diyarkirin; lêdana ku şûna wê li bedena jinê nemîne rêyek e ji bo ku xeyd û serhildana jinê bi dawî bike. Belê, gava jin bi mêrê xwe re xweş derbas neke, jiyana jin û mêrîtiyê bike zîndan, di vê rewşê de mêr dê çi bike? Bi rastî Qur'anê rêya çareseriyê nîşan daye; pêşî ferman li mêr kiriye ku sebrê bikêşe û bi jinê re xweş derbas bike, lê şîret bike. Piştre wê di nivînê de bi tenê bihêle, heke ev navgîn tev fêde nedin, vêca awayekî din lazim e ku ew jî lêdan e. Ji bo ku eks û rika şeytanî bişkîne. Zerara lêdanê ji bo jinê ji zerara berdanê hindiktir e. Gava zerara biçûk û ya mezin bêne kêleka hev, wê çaxê zerara biçûk dibe qencî.

35- Eger hûn ji xerabûna navbera jin û mêr endîşe bikin, hekemekî ji lêzimên mêr û hekemekî ji lêzimên jinê bişînin cem wan. Eger ev hekem lihevhatina wan bixwazin û pêk bînin Xwedê dê navbera wan çêke. Bêguman Xwedê zana ye, agahdar e.

36- (Gelî mirovan!) Îbadeta Xwedê bikin û qet tiştekî jê re nekine şirîk. Li dê û bav û lêzimên xwe, li sêwî û belengazan, li cîranên nêzîk û li cîranên xwe yên dûr, li hevalên xwe (yên seferê û kar) û li rêwî û li koleyên ku di bin destê we de ne qenciyê bikin. Bêguman Xwedê ji yê xwedbîn û ji yê qure hez nake.

37- Ew (xwedbîn û qure) ên ku çikûsiyê dikin (ji rizqê ku Xwedê daye wan di riya Xwedê de xerc nakin) û çikûsiyê ber bi xelkê dixin û ya ku Xwedê ji pirkerama xwe daye wan vedişêrin (û li hemberî qenciya Xwedê nankoriyê dikin). Me jî ji bo nankoran ezabekî riswaker amade kiriye.

وَالَّذ۪ينَ يُنْفِقُونَ اَمْوَالَهُمْ رِئَٓاءَ النَّاسِ وَلَا يُؤْمِنُونَ بِاللّٰهِ
وَلَا بِالْيَوْمِ الْاٰخِرِۜ وَمَنْ يَكُنِ الشَّيْطَانُ لَهُ قَر۪ينًا فَسَٓاءَ قَر۪ينًا
٣٨ وَمَاذَا عَلَيْهِمْ لَوْ اٰمَنُوا بِاللّٰهِ وَالْيَوْمِ الْاٰخِرِ وَاَنْفَقُوا
مِمَّا رَزَقَهُمُ اللّٰهُۜ وَكَانَ اللّٰهُ بِهِمْ عَل۪يمًا ٣٩ اِنَّ اللّٰهَ لَا يَظْلِمُ
مِثْقَالَ ذَرَّةٍۚ وَاِنْ تَكُ حَسَنَةً يُضَاعِفْهَا وَيُؤْتِ مِنْ لَدُنْهُ اَجْرًا
عَظ۪يمًا ٤٠ فَكَيْفَ اِذَا جِئْنَا مِنْ كُلِّ اُمَّةٍ بِشَه۪يدٍ وَجِئْنَا بِكَ
عَلٰى هٰٓؤُلَٓاءِ شَه۪يدًاۜ ٤١ يَوْمَئِذٍ يَوَدُّ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا وَعَصَوُا
الرَّسُولَ لَوْ تُسَوّٰى بِهِمُ الْاَرْضُۜ وَلَا يَكْتُمُونَ اللّٰهَ حَد۪يثًا
٤٢ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا لَا تَقْرَبُوا الصَّلٰوةَ وَاَنْتُمْ سُكَارٰى
حَتّٰى تَعْلَمُوا مَا تَقُولُونَ وَلَا جُنُبًا اِلَّا عَابِر۪ي سَب۪يلٍ حَتّٰى
تَغْتَسِلُواۜ وَاِنْ كُنْتُمْ مَرْضٰٓى اَوْ عَلٰى سَفَرٍ اَوْ جَٓاءَ اَحَدٌ مِنْكُمْ
مِنَ الْغَٓائِطِ اَوْ لٰمَسْتُمُ النِّسَٓاءَ فَلَمْ تَجِدُوا مَٓاءً فَتَيَمَّمُوا
صَع۪يدًا طَيِّبًا فَامْسَحُوا بِوُجُوهِكُمْ وَاَيْد۪يكُمْۜ اِنَّ اللّٰهَ كَانَ
عَفُوًّا غَفُورًا ٤٣ اَلَمْ تَرَ اِلَى الَّذ۪ينَ اُو۫تُوا نَص۪يبًا مِنَ الْكِتَابِ
يَشْتَرُونَ الضَّلَالَةَ وَيُر۪يدُونَ اَنْ تَضِلُّوا السَّب۪يلَۜ ٤٤

وَاللّٰهُ

**38**- Ew (xwedbîn û qure) ên ku bi riyakarî malên xwe xerc dikin, ne bi Xwedê û ne jî bi roja axretê bawerî tînin. (Ev a ku ew dikin daxwaza şeytên e,) Ew kesê şeytan jê re heval be, vêca ew çi pîs heval e!

**39**- Qey çi zerar li wan dibû ku wan bi Xwedê û roja axretê bawerî bianiya û rizqê ku Xwedê dabû wan (di riya wî de) xerc bikira? Xwedê, her zanayê bi helwesta wan e.

**40**- Bêguman Xwedê bi qasî giraniya zereyekî jî li tu kesî neheqiyê nake. Eger (bi qandî giraniya) zereyekî jî qenciya mirovekî hebe, Xwedê qat bi qat wê zêde dike û ji nik xwe xelateke mezin dide wî. (Eger neqenciyên wî hebin, bi dadmendî wî ceza dike û cezayê wî jî zêde nake!)

**41**- (Ya Muhemmed!) Ma rewşa mirovan (roja qiyametê) dê çawa bibe, dema em her umetekê digel şahidekî bînin (mexsed pê pêxember e ku ew li ser umeta xwe dibe şahidê taet û bêtaetiya wan) û te jî li ser umeta te bikin şahid (ê kar û kiryarên wan)?!

**42**- Wê rojê, ew ên ku kafir bûn û bêemriya pêxember kirin, ji dil dixwazin ku erd li wan bê hev û ew nikarin peyvekê jî ji Xwedê veşêrin.

**43**- Gelî yên ku bawerî anîne! Dema hûn serxweş bin heta hûn bizanin ka hûn çi dibêjin û dema hûn bi cenabet bin -ji bilî yê rêwî- heta hûn xwe neşon, zinhar (!) xwe nêzî nimêjê mekin. Eger hûn nexweş bin, yan rêwî bin yan yek ji we ji (avrêjê) hatibe, yan jî we dest li jinan dabe û we av bi dest nexistibe, wê çaxê bi axeke paqij teyemumê bigirin; pê rû û destên xwe vemalin (mesih bikin). Bêguman Xwedê efûkar e, bexşende ye.

Gava mirovekî misliman bixwaze desmêj bigire yan jî cinabeya xwe ji stûyê xwe rake lêbelê av bi destê wî nekeve, hingê ew bi cinsê axê dikare teyemum bigire. Teyemumê hem cihê desmêjê hem jî cihê şûştina cinabeyê digre. Lêbelê teyemum di wî haletî de jî caiz û rewa ye ku îstîmala avê bêderfet be. Ev mijar bi dorferehî di kitêbên fiqhê de hatiye ravekirin. Her wiha di ayetê de bêjeya "Ew lamestumun-nîsaa" derbas bû ku me jî bi "yan jî we dest li jinan dabe" tercume kir. Mebest ji wê destdanê pêwendiya cinsî ye. Lewra ev yek hem ji Îmam Elî, hem jî ji Îbnî Ebbas *(Xwedê ji wan razî be)* hatiye ragihandin ku ji vê destdanê mebest pêwendiya cinsî ye. Ne ku destlêketina asayî ye.

**44**- De ka li wan ên ku (Xwedê) parek ji kitêbê (ku Tewrat e) daye wan binêre! Wan di şûna hîdayetê de rêşaşî dikir û wan dixwest ku hûn jî (wekî wan) riya rast û durist winda bikin.

وَاللّٰهُ اَعْلَمُ بِاَعْدَٓائِكُمْ وَكَفٰى بِاللّٰهِ وَلِيًّا وَكَفٰى بِاللّٰهِ نَصِيرًا
﴿٤٥﴾ مِنَ الَّذ۪ينَ هَادُوا يُحَرِّفُونَ الْكَلِمَ عَنْ مَوَاضِعِه۪ وَيَقُولُونَ
سَمِعْنَا وَعَصَيْنَا وَاسْمَعْ غَيْرَ مُسْمَعٍ وَرَاعِنَا لَيًّا بِاَلْسِنَتِهِمْ
وَطَعْنًا فِى الدّ۪ينِ وَلَوْ اَنَّهُمْ قَالُوا سَمِعْنَا وَاَطَعْنَا وَاسْمَعْ
وَانْظُرْنَا لَكَانَ خَيْرًا لَهُمْ وَاَقْوَمَ وَلٰكِنْ لَعَنَهُمُ اللّٰهُ بِكُفْرِهِمْ
فَلَا يُؤْمِنُونَ اِلَّا قَل۪يلًا ﴿٤٦﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اُو۫تُوا الْكِتَابَ اٰمِنُوا
بِمَا نَزَّلْنَا مُصَدِّقًا لِمَا مَعَكُمْ مِنْ قَبْلِ اَنْ نَطْمِسَ وُجُوهًا
فَنَرُدَّهَا عَلٰٓى اَدْبَارِهَٓا اَوْ نَلْعَنَهُمْ كَمَا لَعَنَّٓا اَصْحَابَ السَّبْتِ
وَكَانَ اَمْرُ اللّٰهِ مَفْعُولًا ﴿٤٧﴾ اِنَّ اللّٰهَ لَا يَغْفِرُ اَنْ يُشْرَكَ بِه۪
وَيَغْفِرُ مَا دُونَ ذٰلِكَ لِمَنْ يَشَٓاءُ وَمَنْ يُشْرِكْ بِاللّٰهِ فَقَدِ افْتَرٰٓى
اِثْمًا عَظ۪يمًا ﴿٤٨﴾ اَلَمْ تَرَ اِلَى الَّذ۪ينَ يُزَكُّونَ اَنْفُسَهُمْ بَلِ اللّٰهُ
يُزَكّ۪ى مَنْ يَشَٓاءُ وَلَا يُظْلَمُونَ فَت۪يلًا ﴿٤٩﴾ اُنْظُرْ كَيْفَ يَفْتَرُونَ
عَلَى اللّٰهِ الْكَذِبَ وَكَفٰى بِه۪ٓ اِثْمًا مُب۪ينًا ﴿٥٠﴾ اَلَمْ تَرَ اِلَى الَّذ۪ينَ
اُو۫تُوا نَص۪يبًا مِنَ الْكِتَابِ يُؤْمِنُونَ بِالْجِبْتِ وَالطَّاغُوتِ
وَيَقُولُونَ لِلَّذ۪ينَ كَفَرُوا هٰٓؤُلَٓاءِ اَهْدٰى مِنَ الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا سَب۪يلًا ﴿٥١﴾

**45**- Xwedê (ji we) bêhtir bi neyarên we dizane. Xwedê, bi dost û piştevanî besî we ye û bi arîkarî jî besî we ye.

**46**- Qismek ji cihûyan bêjeyên wehyê ji cihên wan diguherînin, (û ji pêxember re) dibêjin: Me (gotina te) bihîst û me bi gotina te nekir. Guhê xwe bide me; bila guh li te nebe! (Dibêjin:) Ra'îna ango li me miqate be, lê zimanên xwe li hev diherbilandin, devên xwe xwar dikirin, (dema ku "raîne" ji devên xwe dertanîn, henekên xwe bi wî û bi dînê wî dikirin). Hal ev e ku eger bigotina "me seh kir û me emrê te pêk anî, li me guhdarî bike û (di şûna ra'îna de) unzurna (li me binêre)" bigotina dê ji wan re çêtir û rasttir bûya. Lê belê bi sedema kafiriya wan Xwedê ew ji rehma xwe dûr kirin, (lanet li wan barand), îcar ji bilî hinekan ew bawerî nayînin.

**47**- Hey gelî yên ku kitêb ji wan re hatiye dayîn! Berî ku em hinek rûyan misêwayî hev bikin, vêca em wan pêşpaşkî bizîvirînin, yan jî wekî ku me xwediyên (nêçîra) roja şemiyê (sebtê) mesix kirin, em wan jî mesix bikin, bi wehya ku me ji Muhemmed re hinartiye bawerî bînin ku ew rastdêr e ji bo wehya (Tewrata) digel we, muheqeq fermana Xwedê her dê bête cih.

Mebest ji xwediyê nêçîra roja şemiyê hinek cihû bûn, digel ku pêdiviya wan tune bû jî dîsa rêza roja şemiyê negirtin. Vêca Xwedê ew mesix kirin, ji şiklê însanan deranîn û xistin şiklê meymûnan.

**48**- Bêguman Xwedê li yê ku ji Xwedê re hevparan çêdike nabore û ji bilî vê ji bo kesê ku bivê, li wî dibore. Çi kesê ji Xwedê re hevpar çêkiribe, wî bêbextiyeke giran û gunehekî mezin kiriye.

**49**- Ma tu li wan ên ku nefsa xwe pak didêrin, nanêrî? Na! Belkî Xwedê kesê ku bivê pak didêre û bi qasî derzika di dendika xurmê de neheqî li tu kesî nabe.

**50**- (Ya Muhemmed!) De binêre, çawa li ser (navê) Xwedê bi derewî bêbextiyan dikin û ev gunehkariya aşkera besî wan e.

**51**- Ma tu li wan ên ku parek ji kitêbê ji wan re hatiye dayîn nanêrî ku bi cipt û taxûtî (çi qas kesên serxweveçûyî) baweriyê tînin û ji yên kafir re dibêjin: Ha (hûn) ev ên ha ji wan ên ku bawerî anîne rasterêtir in!

أُولٰٓئِكَ الَّذ۪ينَ لَعَنَهُمُ اللّٰهُۜ وَمَنْ يَلْعَنِ اللّٰهُ فَلَنْ تَجِدَ لَهُ نَص۪يراًۜ
٥٢ اَمْ لَهُمْ نَص۪يبٌ مِنَ الْمُلْكِ فَاِذاً لَا يُؤْتُونَ النَّاسَ نَق۪يراًۙ ٥٣
اَمْ يَحْسُدُونَ النَّاسَ عَلٰى مَٓا اٰتٰيهُمُ اللّٰهُ مِنْ فَضْلِه۪ۚ فَقَدْ اٰتَيْنَٓا
اٰلَ اِبْرٰه۪يمَ الْكِتَابَ وَالْحِكْمَةَ وَاٰتَيْنَاهُمْ مُلْكاً عَظ۪يماً ٥٤ فَمِنْهُمْ
مَنْ اٰمَنَ بِه۪ وَمِنْهُمْ مَنْ صَدَّ عَنْهُۜ وَكَفٰى بِجَهَنَّمَ سَع۪يراً ٥٥ اِنَّ الَّذ۪ينَ
كَفَرُوا بِاٰيَاتِنَا سَوْفَ نُصْل۪يهِمْ نَاراًۜ كُلَّمَا نَضِجَتْ جُلُودُهُمْ
بَدَّلْنَاهُمْ جُلُوداً غَيْرَهَا لِيَذُوقُوا الْعَذَابَۜ اِنَّ اللّٰهَ كَانَ عَز۪يزاً
حَك۪يماً ٥٦ وَالَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ سَنُدْخِلُهُمْ جَنَّاتٍ
تَجْر۪ي مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ خَالِد۪ينَ ف۪يهَٓا اَبَداًۜ لَهُمْ ف۪يهَٓا اَزْوَاجٌ مُطَهَّرَةٌ
وَنُدْخِلُهُمْ ظِلاًّ ظَل۪يلاً ٥٧ اِنَّ اللّٰهَ يَأْمُرُكُمْ اَنْ تُؤَدُّوا الْاَمَانَاتِ
اِلٰٓى اَهْلِهَاۙ وَاِذَا حَكَمْتُمْ بَيْنَ النَّاسِ اَنْ تَحْكُمُوا بِالْعَدْلِۜ اِنَّ اللّٰهَ
نِعِمَّا يَعِظُكُمْ بِه۪ۜ اِنَّ اللّٰهَ كَانَ سَم۪يعاً بَص۪يراً ٥٨ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ
اٰمَنُٓوا اَط۪يعُوا اللّٰهَ وَاَط۪يعُوا الرَّسُولَ وَاُو۬لِي الْاَمْرِ مِنْكُمْۚ
فَاِنْ تَنَازَعْتُمْ ف۪ي شَيْءٍ فَرُدُّوهُ اِلَى اللّٰهِ وَالرَّسُولِ اِنْ كُنْتُمْ
تُؤْمِنُونَ بِاللّٰهِ وَالْيَوْمِ الْاٰخِرِۜ ذٰلِكَ خَيْرٌ وَاَحْسَنُ تَأْو۪يلاًۚ ٥٩



52- Ha ev in, ew ên ku Xwedê lanet li wan barandî (ew ji rehma xwe dûr kirine). Xwedê lanetê li kê bibarîne, vêca tu dê ji wî re tu arîkarekî nebînî (ku wî ji ezabê Xwedê biparêze).

53- Erê, ma ji seltenetê parek ji wan re heye, vêca ku hebane jî dê bi qasî derzika dendikê jî tiştek nedabûne mirovan.

54- Yan jî, ma ew ji mirovan (Pêxember û hevalên wî) -ji ber qenciya ku Xwedê ji kerema xwe daye wan- çevnebariyê dikin? Vêca bêguman me, kitêb û hikmet (pêxemberî) dabû malbata Îbrahîm (Mûsa, Dawud û Suleyman) û me selteneteke mezin jî dabû wan.

55- Hin ji wan bawerî (bi Muhemmed) anî. Hin ji wan jî berê xwe jê vegerand. Dojeh, bi şewata xwe ve besî wan e.

56- Bêguman ew ên ku ayetên me înkar dikin, em ê wan bixin nav êgir, çi qas çermê wan bipije (ku êdî neêşe), em ê çermên wan bi çermekî din (nû) biguherînin da ku jana ezabê biçêjin. Bêguman Xwedê ezîz e, hekîm e.

57- Ew ên ku bawerî anîn û karên qenc kirin, em ê wan bixin bihiştên ku ji bin (mêwedarên) wan çem diherikin û her û her ew ê lê bimînin. Di wan (cenetan) de ji wan re jinên pak û paqij hene û emê wan bixin bin siyeke seraqetî.

58- Bêguman Xwedê emr li we dike ku hûn emanetan (spareyan) bidin xwediyên wan û dema we di navbera mirovan de hukim kir bi dadî (edaletî) hukim bikin. Bêguman ev çi xweş şîret e ku (Xwedê) li we dike! Bêguman Xwedê bihîzer e, bîner e.

Dema Pêxember (s) Mekke fetih kir, Usman kurê Telhe yê xizmetkarê Ke'b, derî girtibû, çûbû ser banê Ke'bê û kilîlên wê nedida û digot: "Eger min bizaniya ku tu pêxember î min dê ew bidana te". Vêca Elî derket ser ban û bi zorê kilîl jê stand û derî vekir. Cenabê Pêxember çû hundir, tê de du rik'et nimêj kir. Gava derket apê wî Ebbas jê re got: Kilîla Ke'bê bide min, bila şerefa xizmeta wê ji min re be. Vêca ji ber vê yekê ev ayeta ku borî daket. Pêxember (s) ji Elî re got: Kilîlê bide xizmetkarê pêşî û jê lêborîna xwe bixwaze. Ev rûdan bû sebebê mislimanbûna Usmanê kurê Telhe jî.

59- Gelî yên ku bawerî anîne! Bi gotina Xwedê, bi gotina Pêxember û bi gotina fermandarên ji xwe (ên musilman) bikin. Êdî eger we der heqê tiştekî (lêqewmînekê) de hev rakişand -vêca eger bi rastî hûn bi Xwedê û bi roja axretê bawer in- wê bibine ber (kitêba) Xwedê û (hedîsa) Pêxember. Ev a ha (ji we re) çêtir e û dûmahîka wê rindtir e.

اَلَمْ تَرَ اِلَى الَّذ۪ينَ يَزْعُمُونَ اَنَّهُمْ اٰمَنُوا بِمَٓا اُنْزِلَ اِلَيْكَ
وَمَٓا اُنْزِلَ مِنْ قَبْلِكَ يُر۪يدُونَ اَنْ يَتَحَاكَمُٓوا اِلَى
الطَّاغُوتِ وَقَدْ اُمِرُٓوا اَنْ يَكْفُرُوا بِه۪ۜ وَيُر۪يدُ الشَّيْطَانُ
اَنْ يُضِلَّهُمْ ضَلَالًا بَع۪يدًا ﴿٦٠﴾ وَاِذَا ق۪يلَ لَهُمْ تَعَالَوْا
اِلٰى مَٓا اَنْزَلَ اللّٰهُ وَاِلَى الرَّسُولِ رَاَيْتَ الْمُنَافِق۪ينَ
يَصُدُّونَ عَنْكَ صُدُودًاۚ ﴿٦١﴾ فَكَيْفَ اِذَٓا اَصَابَتْهُمْ
مُص۪يبَةٌ بِمَا قَدَّمَتْ اَيْد۪يهِمْ ثُمَّ جَٓاؤُ۫كَ يَحْلِفُونَ بِاللّٰهِ
اِنْ اَرَدْنَٓا اِلَّٓا اِحْسَانًا وَتَوْف۪يقًا ﴿٦٢﴾ اُو۬لٰٓئِكَ الَّذ۪ينَ يَعْلَمُ
اللّٰهُ مَا ف۪ي قُلُوبِهِمْ فَاَعْرِضْ عَنْهُمْ وَعِظْهُمْ وَقُلْ لَهُمْ
ف۪ٓي اَنْفُسِهِمْ قَوْلًا بَل۪يغًا ﴿٦٣﴾ وَمَٓا اَرْسَلْنَا مِنْ رَسُولٍ
اِلَّا لِيُطَاعَ بِاِذْنِ اللّٰهِۜ وَلَوْ اَنَّهُمْ اِذْ ظَلَمُٓوا اَنْفُسَهُمْ
جَٓاؤُ۫كَ فَاسْتَغْفَرُوا اللّٰهَ وَاسْتَغْفَرَ لَهُمُ الرَّسُولُ
لَوَجَدُوا اللّٰهَ تَوَّابًا رَح۪يمًا ﴿٦٤﴾ فَلَا وَرَبِّكَ لَا يُؤْمِنُونَ
حَتّٰى يُحَكِّمُوكَ ف۪يمَا شَجَرَ بَيْنَهُمْ ثُمَّ لَا يَجِدُوا
ف۪ٓي اَنْفُسِهِمْ حَرَجًا مِمَّا قَضَيْتَ وَيُسَلِّمُوا تَسْل۪يمًا ﴿٦٥﴾

**60-** (Ya Muhemmed!) Ma tu li rewşa wan munafiqan nanêrî, ewên ku qaşo dibêjin: Wan bi Qur'ana ku ji te re hatî şandin û bi kitêbên ku ji (pêxember)ên beriya te re jî hatine şandin bawerî aniye. Digel ku ew dixwazin (ne li ber hukmê Xwedê û Pêxemberê wî) li ber hukmê taxûtî mehkeme bibin? Hal ev e ku ferman li wan hatibû kirin ku ew taxûtî (mehkemeya beşerî) înkar bikin. Şeytan jî dixwaze wan bi şaşiyeke mezin ji heqiyê dûr bixe.

**61-** Dema ji wan (munafiqan) re tê gotin: De werin ber hukmê Qur'ana ku Xwedê hinartiye û werin ber hukmê Pêxemberê wî (da ku di nav we de hukm bikin); tu wan munafiqan dibînî ku ew berê xwe ji te vedigerînin.

**62-** Êdî ma çawa tu li wan şaş namînî? Dema musîbetek bi sedema kirinên wan ên nebaş tê serê wan, di cih de têne cem te û (ji te re) bi Xwedê sond dixwin û dibêjin ku me her qencî û lihevhatin xwestiye!

**63-** Ha munafiq ew kes in ku Xwedê ya di dilê wan de dizane, êdî guhê xwe nede wan, li wan şîret bike û ji wan re di kûrahiya nefsa wan de gotineke bitesîr bibêje.

**64-** Çi pêxemberê ku me şandiye her ji bo ku bi destûra Xwedê bi gotina wî bê kirin me şandiye. Eger dema wan (bi kirina gunehan) neheqî li xwe kir, bihatina cem te û bexşandina xwe ji Xwedê bixwestina û Pêxember jî bexşandina (gunehên) wan (ji Xwedê ) bixwesta, (wê demê) dê wan bidîta ku Xwedê gelek tobepejrên e, dilovîn e.

**65-** Na, sond bi Xwedayê te, ew heta ku di lecên nav xwe de te nekin hekem û paşê ji hukmê te dayî re jî tu tengezariyekê di dilê xwe de nebînin û ji bo wê biryara te dayî jidil xwe berdest nekin, wan bawerî neaniye.

Bawerî, bi ziman tenê nîn e, divê mirov bi dil bawer bike û kirinên mirovî jî wê yekê rast bidêrin. Eger wisa nebe, bes mirov bibêje: Min bawerî anî û bi hukmê Xwedê û pêxemberê wî razî nebe, ew tam zendîqî û nîfaq e!

وَلَوْ اَنَّا كَتَبْنَا عَلَيْهِمْ اَنِ اقْتُلُوا اَنْفُسَكُمْ اَوِ اخْرُجُوا مِنْ
دِيَارِكُمْ مَا فَعَلُوهُ اِلَّا قَلِيلٌ مِنْهُمْ وَلَوْ اَنَّهُمْ فَعَلُوا مَا
يُوعَظُونَ بِهِ لَكَانَ خَيْرًا لَهُمْ وَاَشَدَّ تَثْبِيتًا ﴿٦٦﴾ وَاِذًا
لَاٰتَيْنَاهُمْ مِنْ لَدُنَّا اَجْرًا عَظِيمًا ﴿٦٧﴾ وَلَهَدَيْنَاهُمْ صِرَاطًا
مُسْتَقِيمًا ﴿٦٨﴾ وَمَنْ يُطِعِ اللّٰهَ وَالرَّسُولَ فَاُولٰٓئِكَ مَعَ الَّذِينَ
اَنْعَمَ اللّٰهُ عَلَيْهِمْ مِنَ النَّبِيِّنَ وَالصِّدِّيقِينَ وَالشُّهَدَٓاءِ
وَالصَّالِحِينَ وَحَسُنَ اُولٰٓئِكَ رَفِيقًا ﴿٦٩﴾ ذٰلِكَ الْفَضْلُ مِنَ
اللّٰهِ وَكَفٰى بِاللّٰهِ عَلِيمًا ﴿٧٠﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذِينَ اٰمَنُوا خُذُوا
حِذْرَكُمْ فَانْفِرُوا ثُبَاتٍ اَوِ انْفِرُوا جَمِيعًا ﴿٧١﴾ وَاِنَّ مِنْكُمْ
لَمَنْ لَيُبَطِّئَنَّ فَاِنْ اَصَابَتْكُمْ مُصِيبَةٌ قَالَ قَدْ اَنْعَمَ اللّٰهُ عَلَيَّ
اِذْ لَمْ اَكُنْ مَعَهُمْ شَهِيدًا ﴿٧٢﴾ وَلَئِنْ اَصَابَكُمْ فَضْلٌ مِنَ اللّٰهِ
لَيَقُولَنَّ كَاَنْ لَمْ تَكُنْ بَيْنَكُمْ وَبَيْنَهُ مَوَدَّةٌ يَا لَيْتَنِي
كُنْتُ مَعَهُمْ فَاَفُوزَ فَوْزًا عَظِيمًا ﴿٧٣﴾ فَلْيُقَاتِلْ فِي سَبِيلِ
اللّٰهِ الَّذِينَ يَشْرُونَ الْحَيٰوةَ الدُّنْيَا بِالْاٰخِرَةِ وَمَنْ يُقَاتِلْ
فِي سَبِيلِ اللّٰهِ فَيُقْتَلْ اَوْ يَغْلِبْ فَسَوْفَ نُؤْتِيهِ اَجْرًا عَظِيمًا ﴿٧٤﴾
وَمَا

**66**- Eger me li wan ferman bikira; nefsa xwe bikujin an jî ji welatê xwe derkevin, ji bilî çend kesan ji wan dê ev pêk neaniya. Eger wan şîreta ku li wan dihate kirin pêk bianiya dê ji wan re çêtir bûya û baweriya wan dê bêhtir misoger bibûya.

**67**- Wê çaxê ji cem xwe me dê xelateke mezin bidaya wan.

**68**- Me dê berê wan bidaya riyeke rast û durist.

Ji dayîka bawermendan 'Aîşe (Xwedê jê razî be) hatiye rîwayetkirin, gotiye: Zilamek hate bal Pêxember (s) û jê re got: Hey Pêxemberê Xwedê! Ez, hem ji xwe hem jî ji malbata xwe bêtir ji te hez dikim. Li malê tu têyî bîra min ez hew xwe radigrim heta ku têm cem te û li te dinêrim. Gava ez mirina xwe û ya te di bîra xwe tînim; ez dizanim ku gava tu biçî bihiştê, tu yê digel pêxemberan li mertebeyên bilind bî û ku ez herim bihiştê ez ditirsim ku te nebînim. Vêca Pêxember tu bersiv neda wî heta ku der heqê pirsa wî de ev ayeta hanê nazil bû.

**69**- Kî, bi gotina Xwedê û Pêxemberê wî bike, ha ew digel yên ku Xwedê qenciya xwe li wan kiriye ku ew pêxember, seddîq, şehîd û salih in, ha ew xweşheval in!

**70**- Ev qencî û kerem ji cem Xwedê ye. Bes Xwedê dizane ka kî babet e ji bo qencî û keremê.

**71**- Gelî yên ku bawerî anîne! Li hemberî neyarê xwe tedbîra xwe bigirin, vêca bir bi bir yan jî tev bi hev re derkevin hemberî wan.

Ev ayeta pîroz, bangeke girîng e li mislimanan ku divê ew li hemberî mêtinger, êrîşkar û koledaran li xwe miqate bin ji bo parastina canê xwe, malê xwe, namûsa xwe, welatê xwe, serbestî û serxwebûna xwe tedbîra xwe bigrin; xwe ji bo şer perwerde bikin û roja ku li wan biqewime jî lek bi lek û tev bi hev re herin cîhadê. Bi vî awayî bes dişên bi aştî û azade bijîn.

**72**- Bêguman di nav we de hin kes hene ku dixwazin mucahîdan ji şer bi paş ve bihêlin, êdî eger karesatek were serê we, ew dibêje: Xwedê qencî li min kir ku ez ne bi wan re bûm.

**73**- Sond be, eger ji Xwedê qenciyek li we bibe, wekî ku di nav we û wî de hîç dostanî tune be, ew dibêje: Xwezî ez jî bi wan re bûma da ku min jî serkeftineke mezin bi dest bixista.

**74**- Naxwe, ew ên ku jiyana axretê bi jiyana vê dinyayê kirîne, bila di riya Xwedê de şer bikin. Kî di riya Xwedê de şer bike; vêca bê kuştin an jî bi ser bikeve, em ê perûyeke (xelateke) mezin bidinê.

وَمَا لَكُمْ لَا تُقَاتِلُونَ فٖى سَبٖيلِ اللّٰهِ وَالْمُسْتَضْعَفٖينَ مِنَ الرِّجَالِ
وَالنِّسَٓاءِ وَالْوِلْدَانِ الَّذٖينَ يَقُولُونَ رَبَّنَٓا اَخْرِجْنَا مِنْ هٰذِهِ الْقَرْيَةِ
الظَّالِمِ اَهْلُهَاۚ وَاجْعَلْ لَنَا مِنْ لَدُنْكَ وَلِيًّاۚ وَاجْعَلْ لَنَا مِنْ لَدُنْكَ
نَصٖيرًاۜ ﴿٧٥﴾ اَلَّذٖينَ اٰمَنُوا يُقَاتِلُونَ فٖى سَبٖيلِ اللّٰهِۚ وَالَّذٖينَ كَفَرُوا
يُقَاتِلُونَ فٖى سَبٖيلِ الطَّاغُوتِ فَقَاتِلُٓوا اَوْلِيَٓاءَ الشَّيْطَانِۚ اِنَّ كَيْدَ
الشَّيْطَانِ كَانَ ضَعٖيفًاۚ ﴿٧٦﴾ اَلَمْ تَرَ اِلَى الَّذٖينَ قٖيلَ لَهُمْ كُفُّٓوا اَيْدِيَكُمْ
وَاَقٖيمُوا الصَّلٰوةَ وَاٰتُوا الزَّكٰوةَۚ فَلَمَّا كُتِبَ عَلَيْهِمُ الْقِتَالُ اِذَا فَرٖيقٌ
مِنْهُمْ يَخْشَوْنَ النَّاسَ كَخَشْيَةِ اللّٰهِ اَوْ اَشَدَّ خَشْيَةًۚ وَقَالُوا رَبَّنَا
لِمَ كَتَبْتَ عَلَيْنَا الْقِتَالَۚ لَوْلَٓا اَخَّرْتَنَٓا اِلٰٓى اَجَلٍ قَرٖيبٍۜ قُلْ مَتَاعُ
الدُّنْيَا قَلٖيلٌۚ وَالْاٰخِرَةُ خَيْرٌ لِمَنِ اتَّقٰى وَلَا تُظْلَمُونَ فَتٖيلًا ﴿٧٧﴾ اَيْنَ مَا
تَكُونُوا يُدْرِكْكُمُ الْمَوْتُ وَلَوْ كُنْتُمْ فٖى بُرُوجٍ مُشَيَّدَةٍۜ وَاِنْ تُصِبْهُمْ
حَسَنَةٌ يَقُولُوا هٰذِهٖ مِنْ عِنْدِ اللّٰهِۚ وَاِنْ تُصِبْهُمْ سَيِّئَةٌ يَقُولُوا هٰذِهٖ
مِنْ عِنْدِكَۜ قُلْ كُلٌّ مِنْ عِنْدِ اللّٰهِۜ فَمَالِ هٰٓؤُلَٓاءِ الْقَوْمِ لَا يَكَادُونَ يَفْقَهُونَ
حَدٖيثًا ﴿٧٨﴾ مَٓا اَصَابَكَ مِنْ حَسَنَةٍ فَمِنَ اللّٰهِۘ وَمَٓا اَصَابَكَ مِنْ سَيِّئَةٍ
فَمِنْ نَفْسِكَۜ وَاَرْسَلْنَاكَ لِلنَّاسِ رَسُولًاۜ وَكَفٰى بِاللّٰهِ شَهٖيدًا ﴿٧٩﴾

**75-** (Gelî bawermendan!) Ma çi ji we bûye ku hûn di riya Xwedê de û ji bo rizgarkirina mustezefên ji mêr û jin û zarokên bindest şer nakin? Ew mustez'efên ku dibêjin: Xwedayê me! Me ji vî welatê ku gelê wî zordar in derîne, xwediyekî ji cem xwe ji me re bişîne û ji cem xwe ji me re arîkarekî bişîne.

**76-** Ew ên ku bawerî anîne di riya Xwedê de şer dikin û yên ku bawerî neanîne di riya taxûtî (Şeytên û dozên pûç) de şer dikin. (Gelî dostên Xwedê!) Naxwe li hemberî dostên şeytên şer bikin; bêguman kemîn û hîleya şeytên qels e.

**77-** Ma te ew nedîtin, ew ên ku (li Mekkê) ji wan re hate gotin: Destên xwe ji şer bigirin, bi tekûzî nimêj bikin û zekata malê xwe bidin"?! Çi dema (li Medînê) şer li ser wan hate ferzkirin, heman celebek ji wan çawa ku ji Xwedê bitirse yan jî hê bêhtirî wê ji mirovan ditirsiyan. Gotin: Xwedêyo! Çima te şer li ser me ferz kir?! Çira te heta demeke nêzîk (fermana cîhadê) bi paş neêxist? (Ya Muhemmed! Ji wan re) Bibêje: xweşî û pertalê dinyayê hindik e. Ewê ku xwe ji xezeba Xwedê biparêze axret jê re çêtir e û bi qasî derzika sîsika xurmê jî neheqî li we nayê kirin.

Ji Îbnu Ebbas hatiye ragihandin ku Ebdurrahman kurê Ewf û hevalekî xwe li Mekkê hatine bal Pêxember (s) û gotinê: Hey Pêxemberê Xwedê! Gava em muşrik bûn em ezîz bûn, vêca çi dema em misliman bûn em reben bûn? Pêxember gote: Ez bi efûkirinê hatime emirkirin. Naxwe şerê wan mekin. Çi gava Xwedê Pêxemberê xwe vegu-hast Medînê, fermana şer li wî kir. Vêca wan xwe ji şer girtin. Ji loma Xwedê ev ayet nazil kir û rexne li wan girt.

**78-** Hûn li ku dibin bibin mirin her dê bigihîje we, çendî hûn di kelên asê û saxlem de bin jî! Eger qenciyek li wan bibe, dibêjin: "Ev ji cem Xwedê ye." Eger belayek bê serê wan, dibêjin: "Ev ji cem te (Muhemmed) bûye. Bibêje: Tev ji cem Xwedê ne. Erê ma çi li vî xelkî qewimiye ku ji gotinê fehm nakin!

**79-** Çi qenciya ku bigihê te ew ji Xwedê ye. Neqenciya ku hatiye serê te ew ji te bi xwe ye. (Ya Muhemmed!) Me tu, ji mirovan re bi pêxemberî şand û (li ser vê rewşê) şahdeyiya Xwedê bes e.

يَسْتَفْتُونَكَۜ قُلِ اللّٰهُ يُفْت۪يكُمْ فِي الْكَلَالَةِۜ اِنِ امْرُؤٌا هَلَكَ لَيْسَ
لَهُ وَلَدٌ وَلَهُٓ اُخْتٌ فَلَهَا نِصْفُ مَا تَرَكَۚ وَهُوَ يَرِثُهَٓا اِنْ لَمْ
يَكُنْ لَهَا وَلَدٌۜ فَاِنْ كَانَتَا اثْنَتَيْنِ فَلَهُمَا الثُّلُثَانِ مِمَّا تَرَكَۜ
وَاِنْ كَانُٓوا اِخْوَةً رِجَالًا وَنِسَٓاءً فَلِلذَّكَرِ مِثْلُ حَظِّ الْاُنْثَيَيْنِۜ
يُبَيِّنُ اللّٰهُ لَكُمْ اَنْ تَضِلُّواۜ وَاللّٰهُ بِكُلِّ شَيْءٍ عَل۪يمٌ ﴿١٧٦﴾

سُورَةُ الْمَائِدَةِ مَدَنِيَّةٌ وَهِيَ
مِائَةٌ وَعِشْرُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ

يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُٓوا اَوْفُوا بِالْعُقُودِۜ اُحِلَّتْ لَكُمْ بَه۪يمَةُ الْاَنْعَامِ اِلَّا مَا
يُتْلٰى عَلَيْكُمْ غَيْرَ مُحِلِّي الصَّيْدِ وَاَنْتُمْ حُرُمٌۜ اِنَّ اللّٰهَ يَحْكُمُ مَا
يُر۪يدُ ﴿١﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا لَا تُحِلُّوا شَعَٓائِرَ اللّٰهِ وَلَا الشَّهْرَ الْحَرَامَ
وَلَا الْهَدْيَ وَلَا الْقَلَٓائِدَ وَلَٓا اٰمّ۪ينَ الْبَيْتَ الْحَرَامَ يَبْتَغُونَ فَضْلًا مِنْ
رَبِّهِمْ وَرِضْوَانًاۜ وَاِذَا حَلَلْتُمْ فَاصْطَادُواۜ وَلَا يَجْرِمَنَّكُمْ شَنَاٰنُ قَوْمٍ اَنْ
صَدُّوكُمْ عَنِ الْمَسْجِدِ الْحَرَامِ اَنْ تَعْتَدُواۢ وَتَعَاوَنُوا عَلَى الْبِرِّ وَالتَّقْوٰى
وَلَا تَعَاوَنُوا عَلَى الْاِثْمِ وَالْعُدْوَانِۖ وَاتَّقُوا اللّٰهَۜ اِنَّ اللّٰهَ شَد۪يدُ الْعِقَابِ ﴿٢﴾

**176**- (Ya Muhemmed! Di bara bêwêrtan de) Çareseriyê dipirsin. Bibêje: Ellah Teala di bara mîrateya kesê ku bav û zarokên wî tune bin de çareserî beyan kiriye; yanî eger yekî bêzarok bimire û xwişkeke wî hebe; nîvê mîrateyê ji wê re ye. Eger xwişk bimire û ji wê tu zarok tune bin, birayê wê jî dibe mîratxwerê wê. Eger ji bira du xwişk bimînin, ji mîrateyê ji siseyan didu ya wan e. Eger mîratxwer hem mêr hebin hem jî jin, para mêr bi qasî du parên jinê ye. Ji bo hûn şaş nebin Xwedê ji we re (hukmên dînê we) aşkera dike. Xwedê bi her tiştî zana ye.

## SÛREYÊ MAÎDE

Sûreyê Maîdê ji ayeta sêyem pê ve tev li Medînê di sala şeşem a hicrî de dahatiye û 120 (sed û bîst) ayet e. Ayeta "Îro, min dînê we ji we re kamil kir" li Medîneyê, roja înê, êvara Erefê di Hecca Xatirxwestinê de nazil bûye.

**Maîdê** bi daxwaza "sifre" ye. Di heyama Îsa de hewarî/hevalên wî jê xwestibûn ku li ber Xwedayê xwe bigere û jê bixwaze ku sifreyekê ji asîman ji wan re daxe xwarê. Ji ber ku sûre di ayeta 112em û 114em de behsa vê sifreyê kiriye ev navê "sifre"yê "el-Maîde" lê hatiye danîn. Sûreyê Maîde, bi piranî li ser aliyê hiqûqî disekine û hinekê ji mijarên eqîdê û qiseyên ehlê kitêban jî xeber dide. Ev sûreyê pîroz, di wê çaxa ku Pêxemberê Xwedê ji Hudeybiyeyê vegeriyaye jê re hate xwarê. Sûreyî, behsa hukmên peymandayîn, heywanê ku tên gurandin, nêçîr, îhram, mehrkirina jinên fileh û cihûyan, riddet, hukmê teharetê, cezayê diziyê, cezayê zulmê, cezayê fesadiya li ser rûyê erdê, hukmê mey û qumarê, kefaretê sondan, kuştina heywanan li Heremê, wesiyeta li ber mirinê, heywanên ku guhê wan tê qelaştin, deveyên ku dikirin nezir û hukmê kesê ku bi Şerî'etê emel neke, dike.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

**1**- Ey gelî bawermendan! Soz û peymanên xwe (ew ên we bi Xwedê re dane û ew ên we di navbera xwe bi xwe de dane) bi cih bînin. Ji bilî yên ji we re bên xwendin (ku biryar li ser heramiya wan hatiye dayîn) û ji bilî yên ku we di îhraman de nêçîr kirine, (xwarina goştê) terşan (deve, dewar û pezan) ji bo we hatiye helalkirin. Bêguman Xwedê, tiştê bivê biryarê pê dide.

**2**- Ey gelî bawermendan! Nedin ser nîşanên dînê Xwedê û rûmeta mehên heramkirî yên birûmet (ku Zilqade, Zilhice, Muherem û Receb in) meşikînin (û tê de şer nekin). Heywanên ji bo Qurbanê û terşên stûristikkirî (ku dîyarî ne ji bo Kabê) û kesên ku ji bo daxwazkirina berjewendiyeke bazirganî û rizaya Xwedayê xwe serdana mala pîroz dikin, li hember wan bêrêziyê mekin. Vêca dema hûn ji îhraman derketin bi serbestî nêçîrê bikin. Bila kîna we, ya ji qewmekî ku bi sedema rêka Kabê (sala Hudeybiyê) li we girtibû, we neajo ser ya ku hûn di biwara wan de zêdegaviyê bikin! Li ser qencî û teqwayê arîkariya hev bikin û li ser gunehkarî û zêdegaviyê arîkariya hev mekin. Hay ji (emr û nehyê) Xwedê hebin, bêguman cezakirina Xwedê pir dijwar e.

حُرِّمَتْ عَلَيْكُمُ الْمَيْتَةُ وَالدَّمُ وَلَحْمُ الْخِنْزٖيرِ وَمَٓا اُهِلَّ لِغَيْرِ اللّٰهِ
بِهٖ وَالْمُنْخَنِقَةُ وَالْمَوْقُوذَةُ وَالْمُتَرَدِّيَةُ وَالنَّطٖيحَةُ وَمَٓا اَكَلَ السَّبُعُ
اِلَّا مَا ذَكَّيْتُمْ وَمَا ذُبِحَ عَلَى النُّصُبِ وَاَنْ تَسْتَقْسِمُوا بِالْاَزْلَامِؕ
ذٰلِكُمْ فِسْقٌؕ اَلْيَوْمَ يَئِسَ الَّذٖينَ كَفَرُوا مِنْ دٖينِكُمْ فَلَا تَخْشَوْهُمْ
وَاخْشَوْنِؕ اَلْيَوْمَ اَكْمَلْتُ لَكُمْ دٖينَكُمْ وَاَتْمَمْتُ عَلَيْكُمْ نِعْمَتٖي
وَرَضٖيتُ لَكُمُ الْاِسْلَامَ دٖينًاؕ فَمَنِ اضْطُرَّ فٖي مَخْمَصَةٍ غَيْرَ
مُتَجَانِفٍ لِاِثْمٍۙ فَاِنَّ اللّٰهَ غَفُورٌ رَحٖيمٌ ﴿٣﴾ يَسْـَٔلُونَكَ مَاذَٓا اُحِلَّ
لَهُمْؕ قُلْ اُحِلَّ لَكُمُ الطَّيِّبَاتُۙ وَمَا عَلَّمْتُمْ مِنَ الْجَوَارِحِ مُكَلِّبٖينَ
تُعَلِّمُونَهُنَّ مِمَّا عَلَّمَكُمُ اللّٰهُؗ فَكُلُوا مِمَّٓا اَمْسَكْنَ عَلَيْكُمْ
وَاذْكُرُوا اسْمَ اللّٰهِ عَلَيْهِۖ وَاتَّقُوا اللّٰهَؕ اِنَّ اللّٰهَ سَرٖيعُ الْحِسَابِ ﴿٤﴾
اَلْيَوْمَ اُحِلَّ لَكُمُ الطَّيِّبَاتُؕ وَطَعَامُ الَّذٖينَ اُو۫تُوا الْكِتَابَ حِلٌّ لَكُمْۖ
وَطَعَامُكُمْ حِلٌّ لَهُمْؗ وَالْمُحْصَنَاتُ مِنَ الْمُؤْمِنَاتِ وَالْمُحْصَنَاتُ
مِنَ الَّذٖينَ اُو۫تُوا الْكِتَابَ مِنْ قَبْلِكُمْ اِذَٓا اٰتَيْتُمُوهُنَّ اُجُورَهُنَّ
مُحْصِنٖينَ غَيْرَ مُسَافِحٖينَ وَلَا مُتَّخِذٖٓي اَخْدَانٍؕ وَمَنْ يَكْفُرْ
بِالْاٖيمَانِ فَقَدْ حَبِطَ عَمَلُهُؗ وَهُوَ فِي الْاٰخِرَةِ مِنَ الْخَاسِرٖينَ ﴿٥﴾

يَٓا اَيُّهَا

3- (Gelî bawermendan!) Xwarina goştê (heywana) mirarbûyî û xwîn, goştê beraz û heywana ku ne li ser navê Xwedê hatiye şerjêkirin, goştê heywana fetisandî û ya bi lêxistinê hatibe kuştin, ya ji jorê de werbûyî û ya ku bi poşlêketinê miribe, ya ku canewaran ew xwaribe -lê ya ku bi saxî we ew şerjêkiribe ew cuda ye- û ya ku li ber pûtan hatiye şerjêkirin, ya ku hûn bi zilan falan vekin û li nesîbê xwe bigerin, (ev tev) li ser we hatine heramkirin. Ev ên ha (yên ku hatin gotin, xwarina goştên wan) fisq e (derketina ji rêka Xwedê ye). Îro ew ên ku kafir in, wan hêviya xwe ji (tunekirina) dînê we qut kiriye. Êdî ji wan netirsin; ji min bitirsin. Îro, min dînê we ji bo we kemiland (tekûz kir). Min qenciya xwe li ser we temam kir û min ji we re bi olîtî îslam pejirand. Vêca kî ku ji naçarî; ne bi gunehkarî tûşî birçîbûneke awarte bibe û ji van ên me gotî bixwe, vêca bêguman Xwedê Teala gunehjêbir e, dilovîn e.

Di bara vê ayetê de hatiye ragihandin ku zilamekî cihû hatiye bal Umerê kurê Xettab jê re gotiye: Hey mezinê bawermendan! Di kitêba we de ayetek heye, hûn wê dixwînin. Heke ew ji bo civata me cihûyan hatibûya şandin me dê ew roj bikira cejn! Umer got: Tu behsa kîjan ayetê dikî? Got: "Îro, min dînê we ji we re tekûz kir, min qenciya xwe li ser we temam kir û ez ji bo we ji rêbazî ve bi îslamê razî bûm". Umer got: Bi navê Xwedê sond be, ez wê roja ku ev ayet ji Pêxemberê Xwedê re hatiye şandin û wê gava ku daketiye jî dizanim. Ew, roja înê, êvara erefê ji Qasidê Xwedê re hatiye hinartin. Îmamê Buxarî û Muslim ragihandiye.

4- (Ya Muhemmed!) Ji te pirs dikin; ka çi ji wan re hatiye helalkirin? Bibêje: Çi tiştê ku xweş û pak be û nêçîra heywanên ceribandî ew ên xwedînab û xwedîkulab, bi egera ku ji wê zanîna Xwedê dayî we hûn wan perwerde bikin, (ev ên ha) ji bo we hatine helalkirin, vêca ji nêçîra ku wan ji we re girtibe bixwin. Dema we heywana nêçîrvan şand nêçîrê; navê Xwedê li serê bînin û xwe bi sînorê Xwedê biparêzin. Bêguman hesabdîtina Xwedê pir bilez e.

5- (Gelî bawermendan!) Îro, ji bo we tiştên xweş û pak hatine helalkirin. Destkujiya xwedankitêban ji we re helal e û destkujiya we jî ji bo wan helal e. Ji mislimanan jinên pak, paqij û azad, ji xwedankitêbên beriya we jî jinên azad û dawpaqij, dema hûn mehra wan bidin, bi namûs, ne bi zinayê û ne ku hûn wan ji xwe re bi dostatî (bi evînî) bigirin, ji bo we helal in. Kî ku ahkamên îslamê înkar bike, bêguman kirinên wî (yên baş) pûç dibin û li axretê ew ji yên ku xesirî ne.

يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُٓوا اِذَا قُمْتُمْ اِلَى الصَّلٰوةِ فَاغْسِلُوا
وُجُوهَكُمْ وَاَيْدِيَكُمْ اِلَى الْمَرَافِقِ وَامْسَحُوا بِرُؤُ۫سِكُمْ
وَاَرْجُلَكُمْ اِلَى الْكَعْبَيْنِؕ وَاِنْ كُنْتُمْ جُنُبًا فَاطَّهَّرُواۜ
وَاِنْ كُنْتُمْ مَرْضٰٓى اَوْ عَلٰى سَفَرٍ اَوْ جَٓاءَ اَحَدٌ مِنْكُمْ
مِنَ الْغَٓائِطِ اَوْ لٰمَسْتُمُ النِّسَٓاءَ فَلَمْ تَجِدُوا مَٓاءً فَتَيَمَّمُوا
صَع۪يدًا طَيِّبًا فَامْسَحُوا بِوُجُوهِكُمْ وَاَيْد۪يكُمْ مِنْهُۜ مَا
يُر۪يدُ اللّٰهُ لِيَجْعَلَ عَلَيْكُمْ مِنْ حَرَجٍ وَلٰكِنْ يُر۪يدُ
لِيُطَهِّرَكُمْ وَلِيُتِمَّ نِعْمَتَهُ عَلَيْكُمْ لَعَلَّكُمْ تَشْكُرُونَ ٦
وَاذْكُرُوا نِعْمَةَ اللّٰهِ عَلَيْكُمْ وَم۪يثَاقَهُ الَّذ۪ي وَاثَقَكُمْ
بِه۪ٓۙ اِذْ قُلْتُمْ سَمِعْنَا وَاَطَعْنَاۘ وَاتَّقُوا اللّٰهَۜ اِنَّ اللّٰهَ عَل۪يمٌ
بِذَاتِ الصُّدُورِ ٧ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا كُونُوا قَوَّام۪ينَ
لِلّٰهِ شُهَدَٓاءَ بِالْقِسْطِۘ وَلَا يَجْرِمَنَّكُمْ شَنَاٰنُ قَوْمٍ
عَلٰٓى اَلَّا تَعْدِلُواۜ اِعْدِلُواۗ هُوَ اَقْرَبُ لِلتَّقْوٰىۘ وَاتَّقُوا اللّٰهَۜ
اِنَّ اللّٰهَ خَب۪يرٌ بِمَا تَعْمَلُونَ ٨ وَعَدَ اللّٰهُ الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا
وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِۙ لَهُمْ مَغْفِرَةٌ وَاَجْرٌ عَظ۪يمٌ ٩

6- Hey gelî yên ku bawerî anîne! Dema we xwest nimêj bikin, rûyê xwe û destên xwe heta her du enîşkan bişon, serê xwe mesih bikin (vemalin), her du lingên xwe digel gwîzekan bişon. Eger hûn bi cenabet bin xwe ji cenabetiyê paqij bikin. Eger hûn nexweş bin, yan rêwî bin yan yek ji we ji avrêjê were, yan jî hûn hinguftbin jinan û we di van halan de avek nedîtibe, wê çaxê bi axeke paqij teyemmûme bigrin; rûyê xwe û destên xwe bi axê mesih bikin (vemalin). Xwedê naxwaze ji we re zehmetiyê derêxe; lê belê dixwaze we paqij bike û li ser we qenciya xwe temam bike da ku hûn wî bişêkirînin.

**Nimêj**, bi qesda îbadetê ew e ku mirov biçe ber hizûra Xwedê bi awayekî mueyen teetê wî bike û bi wî re bipeyive. Nimêj ew e ku Xwedê evdê xwe qebûlî hizûra xwe dike. Ha ji bo vê qebûlê û eşkerekirina evdîtiyê hin amadehî lazim e hebe. Divê evdê ku li hizûra Xwedê raweste li hişê xwe be, zahir û batinê wî paqij be. Vêca desmêj û serşûştin ji paqijiya zahirî û batinî re navgîn û amadehiyek e. Heke av nebe, yan jî mezeretek hebe, hingî dê bi axê teyemmûm bigre. Çendî teyemmûm paqijîya maddî pêk neyêne jî lê ji bo haziriya îbadetê pêhisa paqijiyê dide. Di ayetê de: "Yan jî we dest avêtbe jinan" derbasbû ku mebest ji wê destavêtinê peywendiya cinsî ye. Mirovê ku çûbe nivîna jina xwe û av bi dest wî nekeve ew kare di şûna serşûştinê de teyemum bigre û nimêja xwe bike.

7- (Gelî bawermendan!) Qenciya Xwedê ya li ser xwe û peymana ku ji we wergirtî; dema we got: "Me (fermana te) bihîst û em ji pêkanîna wê re amade ne" bi bîr bînin. Hay ji (sînorê) Xwedê Teala hebin. Bêguman Xwedê bi ya di dilan de dizane.

8- Hey gelî yên ku bawerî anîne! Ji bo Xwedê bi heqiyê rabin û bi rastî şahdehiyê bidin. Bila kîna we ya li hemberî civatekê we neajo bêedaletiyê. Bi dadî tev bigerin. Ev tevger bêhtir nêzîkî teqwayê ye. Ji Xwedê bitirsin. Bêguman Xwedê bi ya ku hûn dikin agahdar e.

9- Xwedê soz daye wan ên ku bawerî anîne û karên qenc kirine ku ji bo wan lêborîn û xelateke mezin heye.

وَالَّذِينَ كَفَرُوا وَكَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَٓا اُو۬لٰٓئِكَ اَصْحَابُ
الْجَح۪يمِ ﴿١٠﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا اذْكُرُوا نِعْمَتَ
اللّٰهِ عَلَيْكُمْ اِذْ هَمَّ قَوْمٌ اَنْ يَبْسُطُٓوا اِلَيْكُمْ اَيْدِيَهُمْ
فَكَفَّ اَيْدِيَهُمْ عَنْكُمْۚ وَاتَّقُوا اللّٰهَۜ وَعَلَى اللّٰهِ فَلْيَتَوَكَّلِ
الْمُؤْمِنُونَ ﴿١١﴾ وَلَقَدْ اَخَذَ اللّٰهُ م۪يثَاقَ بَن۪ٓي اِسْرَٓائ۪يلَۚ
وَبَعَثْنَا مِنْهُمُ اثْنَيْ عَشَرَ نَق۪يبًاۜ وَقَالَ اللّٰهُ اِنّ۪ي
مَعَكُمْۜ لَئِنْ اَقَمْتُمُ الصَّلٰوةَ وَاٰتَيْتُمُ الزَّكٰوةَ وَاٰمَنْتُمْ
بِرُسُل۪ي وَعَزَّرْتُمُوهُمْ وَاَقْرَضْتُمُ اللّٰهَ قَرْضًا حَسَنًا
لَاُكَفِّرَنَّ عَنْكُمْ سَيِّـَٔاتِكُمْ وَلَاُدْخِلَنَّكُمْ جَنَّاتٍ
تَجْر۪ي مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُۚ فَمَنْ كَفَرَ بَعْدَ ذٰلِكَ مِنْكُمْ
فَقَدْ ضَلَّ سَوَٓاءَ السَّب۪يلِ ﴿١٢﴾ فَبِمَا نَقْضِهِمْ م۪يثَاقَهُمْ
لَعَنَّاهُمْ وَجَعَلْنَا قُلُوبَهُمْ قَاسِيَةًۚ يُحَرِّفُونَ الْكَلِمَ
عَنْ مَوَاضِعِه۪ۙ وَنَسُوا حَظًّا مِمَّا ذُكِّرُوا بِه۪ۚ وَلَا تَزَالُ
تَطَّلِعُ عَلٰى خَٓائِنَةٍ مِنْهُمْ اِلَّا قَل۪يلًا مِنْهُمْ فَاعْفُ
عَنْهُمْ وَاصْفَحْۜ اِنَّ اللّٰهَ يُحِبُّ الْمُحْسِن۪ينَ ﴿١٣﴾
وَمِنَ

**10**- Lê ewên kafir bûne û bi ayetên me bawerî neanîne, ha ew xelkê dojehê ne.

**11**- Hey gelî yên ku bawerî anîne! Qenciya Xwedê ya li ser xwe bi bîr bînin, dema civatekê qesd kir ku destên xwe (bi neqencî) dirêjî we bike, Xwedê nehişt destên wan bigihîje we (û hûn ji neqenciya wan parastin). Ji Xwedê bitirsin. Bila yên bawermend tenê xwe bispêrin Xwedê Teala.

Li gorî rîwayetekê hatiye ragihandin ku muşrik û munafiqan nav li zilamekî çekdar dan ku Pêxember bikuje. Her çiqas wî qesda kuştina Pêxember kir jî lê bi înayet û nîgaha Xwedê ew negihaşt armanca xwe. Li gorî rîwayeteke din jî, Benî Nedir hewl dane ku kevirê aş bavêjin ser serê Pêxemberê Xwedê û bi xayîntî wî û hevalên wî bikujin. Di vir de digel ku qesda kuştina Pêxember bi tenê kirine jî, lêbelê ji ber ku ew weke can û jiyana hemû bawermendan e, Xwedê gotiye: "Dema civatekê qesd kir ku destên xwe dirêjî we bike" ku bi geljimarî îfade kiriye.

**12**- Sond be, Xwedê ji Benî Îsraîlîyan peymaneke mikûm wergirt û dozdeh nûner (temsîlkar) ji wan navdar kirin (da li ser navê wan peymanê bistînin). Xwedê ji wan re got: Ez bi we re me. Eger bi rastî hûn nimêj bikin, zekatê bidin, baweriyê bi pêxemberên min bînin, arîkariya wan bikin û (bi bexşandina li ser feqîran) bi awayekî spehî deyn bidin Xwedê Teala, bi sond, ez ê gunehên we efû bikim û ez ê we bixim bihiştên ku di bin wan re çem diherikin. Êdî piştî vê (peymanê) kî ji we kafir bibe, vêca bêguman ew ji rêka rast şaş bûye.

Dema Xwedê îsraîlî ji zordestiya Firewn xilas kirin, bi rêberiya Mûsa berê wan da Qudsê û ji wan re ragihand ku ew der ji wan re kiriye cih û war. Ji wan re got: Herin li hemberî kenaniyên ku li wê derê ne, têbikoşin. Peyman ji wan stand û ji her êlekê zilamek kiribû kefîlê vê peymanê (ku ew diwanzdeh êl bûn). Gava îsraîlî nêzî Qudsê bûn, Mûsa ew diwanzdeh nûner ji bo keşfê şandin Qudsê û ji wan re got: Tişta ku hûn bibînin ji xelkê re nebêjin. Gava desteya keşfê vegeriya ji duyan pê ve, wan nûnerên din soza xwe şikand û ji xelkê re wiha got: Ew kesên ku li Qudsê ne, pir xurt û likar in. Bi vê yekê tirsa wan xistin dilê xelkê û ew bêzirav û newêrek kirin.

**13**- Bi sedema peymanşikandina wan me ew ji rehma xwe dûr kirin, me dilê wan hişk û hola kirin. Ew peyvan ji cihê wan diguherînin û wan pareke (girîng) ji ya ku pê hatibûn fermankirin ji bîr kir. (Ya Muhemmed!) Ji bilî kêm kesan pê ve, tu dê tim ji wan xiyanetê bibînî. Dîsa jî, li wan bibore û guhê xwe nede wan. Bêguman Xwedê ji qencîkarên rast û durist hez dike.

**14**- Me ji wan ên ku digotin: 'birastî em arîkarê Îsa ne' jî peyman wergirt. Lê belê wan jî pareke (girîng) ji şîretên ku li wan hatibûn kirin, ji bîr kirin. Ji ber vê yekê, heta roja qiyametê, me neyartî û kîn xist navbera wan. Xwedê dê wan bi tiştên ku dikirin agahdar bike.

Filehên pêşîn jî ji ber şkence û teqîba cihûyan a bêeman, ji hev bela-wela jiyane. Wan jî ew Incîla ku Xwedê bi rêya wehyê ji Îsa re şandiye, muhafeze nekirine û winda kirine. Lêbelê di serê sedsala sêyema mîladî de, dema Împeretorê Romayê Kostantîn filehtî xistiye dilê xwe, ji nû piçekî fileh rehet jiyane, dest bi nivîsîna pirtûka xwe ya pîroz kirine, di encama vê pêngava wan de bi sedan Incîl derketine rastê. Yek ne mîna yekê bû û hev negirtine. Vêca filehên ku ji rêya Îsa derketin li ser peymana ku dane Xwedê nemane. Bi vî awayî ixtîlaf ketiye nav wan û bi sedsalan ketine hemberê hev û pev çûne ku her grûbek ji wan tekfîra grûba din dike û nahêle ku li dêra wê îbadetê xwe bike. Bi rastî em dibînin ku dewletên rojavayî digel ku biradînên hev in jî, ji bo qelandina hev teknolojiya çekan bi pêş ve dibin; hinan ji wan bombeya navokî (atomî) îcad kirine, hinan ji wan jî bombeya hîdrojenî îcad kirine ku eqil nikare texrîbatî û rûxênkariya van bombeyan teswîr bike.

**15**- Gelî yên xweykitêb! Pêxemberê me hatiye nik we da ku ji we re gelek (hukm)ên ku we ji kitêbê vedişartin, aşkera bike û li gelek (şaşiyên we jî)

الجزء السادس ١١١

وَمِنَ الَّذِينَ قَالُوا إِنَّا نَصَارَى أَخَذْنَا مِيثَاقَهُمْ
فَنَسُوا حَظًّا مِمَّا ذُكِّرُوا بِهِ فَأَغْرَيْنَا بَيْنَهُمُ
الْعَدَاوَةَ وَالْبَغْضَاءَ إِلَى يَوْمِ الْقِيٰمَةِ وَسَوْفَ
يُنَبِّئُهُمُ اللّٰهُ بِمَا كَانُوا يَصْنَعُونَ ﴿١٤﴾ يَا أَهْلَ
الْكِتَابِ قَدْ جَاءَكُمْ رَسُولُنَا يُبَيِّنُ لَكُمْ كَثِيرًا
مِمَّا كُنْتُمْ تُخْفُونَ مِنَ الْكِتَابِ وَيَعْفُوا عَنْ
كَثِيرٍ قَدْ جَاءَكُمْ مِنَ اللّٰهِ نُورٌ وَكِتَابٌ مُبِينٌ ﴿١٥﴾
يَهْدِي بِهِ اللّٰهُ مَنِ اتَّبَعَ رِضْوَانَهُ سُبُلَ السَّلَامِ
وَيُخْرِجُهُمْ مِنَ الظُّلُمَاتِ إِلَى النُّورِ بِإِذْنِهِ
وَيَهْدِيهِمْ إِلَى صِرَاطٍ مُسْتَقِيمٍ ﴿١٦﴾ لَقَدْ كَفَرَ
الَّذِينَ قَالُوا إِنَّ اللّٰهَ هُوَ الْمَسِيحُ ابْنُ مَرْيَمَ
قُلْ فَمَنْ يَمْلِكُ مِنَ اللّٰهِ شَيْئًا إِنْ أَرَادَ أَنْ يُهْلِكَ
الْمَسِيحَ ابْنَ مَرْيَمَ وَأُمَّهُ وَمَنْ فِي الْأَرْضِ جَمِيعًا
وَلِلّٰهِ مُلْكُ السَّمٰوَاتِ وَالْأَرْضِ وَمَا بَيْنَهُمَا
يَخْلُقُ مَا يَشَاءُ وَاللّٰهُ عَلَى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ ﴿١٧﴾

dibore. Bêguman ji bo we, ji cem Xwedê ronahiyek û Qur'aneke ronker hatiye.

**16**- Xwedê Teala, bi Qur'anê kesê ku li rizaya wî bigere, dibe riya xelasiyê, bi vîna xwe wan ji tarîtiyan derdixe ronahiyê û riya rast û durist nîşanî wan dide.

**17**- Sond be, ew ên gotin: "Mesîhê kurê Meryemê xwedê bi xwe ye" ew kafir bûne. (Ya Muhemmed! Ji wan re) Bibêje: Ma êdî kî dikare li hemberî Xwedê tevgerekê bike? Nexwe eger Ellah Teala bixwaze dê Mesîhê kurê Meryemê, dayika wî û yên ku li ser rûyê erdê hene jî, tevan helak bike. Xwedîtiya erd û asîmanan û ya di navbera wan de her ji Xwedê re ye. Ew çi bivê diafirîne û Xwedê helbet li ser her tiştî qadir e.

وَقَالَتِ الْيَهُودُ وَالنَّصَارٰى نَحْنُ اَبْنَٓاءُ اللّٰهِ وَاَحِبَّٓاؤُهُ قُلْ
فَلِمَ يُعَذِّبُكُمْ بِذُنُوبِكُمْ بَلْ اَنْتُمْ بَشَرٌ مِمَّنْ خَلَقَ يَغْفِرُ لِمَنْ
يَشَٓاءُ وَيُعَذِّبُ مَنْ يَشَٓاءُ وَلِلّٰهِ مُلْكُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ
وَمَا بَيْنَهُمَا وَاِلَيْهِ الْمَصِيرُ ﴿١٨﴾ يَٓا اَهْلَ الْكِتَابِ قَدْ جَٓاءَكُمْ
رَسُولُنَا يُبَيِّنُ لَكُمْ عَلٰى فَتْرَةٍ مِنَ الرُّسُلِ اَنْ تَقُولُوا مَا جَٓاءَنَا
مِنْ بَشِيرٍ وَلَا نَذِيرٍ فَقَدْ جَٓاءَكُمْ بَشِيرٌ وَنَذِيرٌ وَاللّٰهُ عَلٰى كُلِّ
شَيْءٍ قَدِيرٌ ﴿١٩﴾ وَاِذْ قَالَ مُوسٰى لِقَوْمِهِ يَا قَوْمِ اذْكُرُوا نِعْمَةَ
اللّٰهِ عَلَيْكُمْ اِذْ جَعَلَ فِيكُمْ اَنْبِيَٓاءَ وَجَعَلَكُمْ مُلُوكًا وَاٰتٰيكُمْ
مَا لَمْ يُؤْتِ اَحَدًا مِنَ الْعَالَمِينَ ﴿٢٠﴾ يَا قَوْمِ ادْخُلُوا الْاَرْضَ
الْمُقَدَّسَةَ الَّتِي كَتَبَ اللّٰهُ لَكُمْ وَلَا تَرْتَدُّوا عَلٰٓى اَدْبَارِكُمْ
فَتَنْقَلِبُوا خَاسِرِينَ ﴿٢١﴾ قَالُوا يَا مُوسٰٓى اِنَّ فِيهَا قَوْمًا جَبَّارِينَ
وَاِنَّا لَنْ نَدْخُلَهَا حَتّٰى يَخْرُجُوا مِنْهَا فَاِنْ يَخْرُجُوا مِنْهَا
فَاِنَّا دَاخِلُونَ ﴿٢٢﴾ قَالَ رَجُلَانِ مِنَ الَّذِينَ يَخَافُونَ اَنْعَمَ
اللّٰهُ عَلَيْهِمَا ادْخُلُوا عَلَيْهِمُ الْبَابَ فَاِذَا دَخَلْتُمُوهُ فَاِنَّكُمْ
غَالِبُونَ وَعَلَى اللّٰهِ فَتَوَكَّلُٓوا اِنْ كُنْتُمْ مُؤْمِنِينَ ﴿٢٣﴾

قَالُوا

**18**- Cihû û filehan digot: Em kurên Xwedê û hezkiriyên wî ne. (Ji wan re) Bibêje: Nexwe çima bi sebeba gunehên we, ezab dide we? Nexêr, belkî hûn jî, ji mexlûqên Xwedê Teala hin kes in. Kesê ku bivê wî efû dike û kesê bivê wî dide ezabê. Xwedîtiya erd û asîmanan û ya di navbera wan de heye her ji Xwedê Teala re ye. Vegera dawiyê jî her bi bal wî ve ye.

**19**- Gelî yên xweykitêb! Bêguman pêxemberê me -di navbereke ku (şandina) pêxemberan ji hev qut bûbû- ji bo we hat ku rastiyan ji bo we aşkera bike, da ku (li qiyametê) hûn nebêjin ji bo me tu mizgînber û tu hişyarker nehatibûn. Vêca bêguman ji bo we mizgînberek û hişyarkerek hat. Xwedê helbet li ser her tiştî kara ye.

**20**- Wê demê Mûsa ji gelê xwe re got: Gelî miletê min! Qenciya Xwedê li we kirî bînin bîra xwe; wê dema pêxember ji (nav) we rakirin û hûn kirin hukimdar û ya ku nedabû tu kesî dabû we.

**21**- Ey gelê min! Herin, têkevin axa pîroz (bajarê Qudsê), ew a ku Xwedê Teala (ketina wê) li we ferman kiriye û (ji tirsa dijmin) li paş xwe nezivirin, nexwe hûn ê bi ziyan (destevala) vegerin.

**22**- Gotin: Ey Mûsa! Bêguman li wir qewmekî zordar heye, heta ku ew ji wê derê dernekevin, em ê neçin wir. Lê belê eger ew ji wir derkevin, vêca em ê herinê.

**23**- Du mêrên ji Xwedêtirs ên ku Xwedê qencî li wan kiriye, gotin: Di dergeh re têkevin ser wan (sitemkaran), dema hûn di dergeh re ketinê, êdî hûn bi ser ketine. Nexwe eger bi rastî hûn bawermend in xwe bispêrin Xwedê Teala.

Ev ayet giş ji ber ku pêwendiya wan bi zaroyên Îsraîl yên çaxê Mûsa re heye "qenciyên ku Xwedê ji cîhaniyan nedane tu kesî dane wan û axa ku ji wan re hatiye misogerkirin jî xasê wê çaxê ye. Temamê ayet û hedîsan didin nîşan ku Pêxemberê dawî Muhammed ji mirovên ku borîne û yên ku hê werin re qenciyeke Xwedê ya bêhempa ye. Misogerkirina parçeyekî mueyen ê axê wek welat ji milletekî re jî bi şert û merc e. Divê ew millet qencîkar be û birastî û durustî di rêya Xwedê de here. Wan bi ayeta 13-em û yên ku wekî wê ne ew wesfê xwe winda kirine. Ayeta Sûretê el-Enbiya ya 105-em eşkere daye zanîn, ka erda pîroz dê ji kê re bimîne, ayet wiha dibêje: "Sond be, piştî Tewratê me di Zebûrê de jî nivîsiye ku hemin evdên min ên qencîkar dê bibin mîratgirên erdê." Xala ku divê li ber çavan were girtin jî ev e.

قَالُوا يَا مُوسٰٓى اِنَّا لَنْ نَدْخُلَهَٓا اَبَدًا مَا دَامُوا ف۪يهَا فَاذْهَبْ
اَنْتَ وَرَبُّكَ فَقَاتِلَٓا اِنَّا هٰهُنَا قَاعِدُونَ ﴿٢٤﴾ قَالَ رَبِّ اِنّ۪ى
لَٓا اَمْلِكُ اِلَّا نَفْس۪ى وَاَخ۪ى فَافْرُقْ بَيْنَنَا وَبَيْنَ الْقَوْمِ الْفَاسِق۪ينَ
﴿٢٥﴾ قَالَ فَاِنَّهَا مُحَرَّمَةٌ عَلَيْهِمْ اَرْبَع۪ينَ سَنَةً يَت۪يهُونَ فِى
الْاَرْضِ فَلَا تَأْسَ عَلَى الْقَوْمِ الْفَاسِق۪ينَ ﴿٢٦﴾ وَاتْلُ عَلَيْهِمْ
نَبَاَ ابْنَىْ اٰدَمَ بِالْحَقِّ اِذْ قَرَّبَا قُرْبَانًا فَتُقُبِّلَ مِنْ اَحَدِهِمَا
وَلَمْ يُتَقَبَّلْ مِنَ الْاٰخَرِ قَالَ لَاَقْتُلَنَّكَ قَالَ اِنَّمَا يَتَقَبَّلُ اللّٰهُ
مِنَ الْمُتَّق۪ينَ ﴿٢٧﴾ لَئِنْ بَسَطْتَ اِلَىَّ يَدَكَ لِتَقْتُلَن۪ى مَٓا اَنَا
بِبَاسِطٍ يَدِىَ اِلَيْكَ لِاَقْتُلَكَ اِنّ۪ٓى اَخَافُ اللّٰهَ رَبَّ الْعَالَم۪ينَ
﴿٢٨﴾ اِنّ۪ٓى اُر۪يدُ اَنْ تَبُٓوءَ بِاِثْم۪ى وَاِثْمِكَ فَتَكُونَ مِنْ اَصْحَابِ
النَّارِ وَذٰلِكَ جَزٰٓؤُا الظَّالِم۪ينَ ﴿٢٩﴾ فَطَوَّعَتْ لَهُ نَفْسُهُ
قَتْلَ اَخ۪يهِ فَقَتَلَهُ فَاَصْبَحَ مِنَ الْخَاسِر۪ينَ ﴿٣٠﴾ فَبَعَثَ اللّٰهُ
غُرَابًا يَبْحَثُ فِى الْاَرْضِ لِيُرِيَهُ كَيْفَ يُوَار۪ى سَوْاَةَ
اَخ۪يهِ قَالَ يَا وَيْلَتٰٓى اَعَجَزْتُ اَنْ اَكُونَ مِثْلَ هٰذَا
الْغُرَابِ فَاُوَارِىَ سَوْاَةَ اَخ۪ى فَاَصْبَحَ مِنَ النَّادِم۪ينَ ﴿٣١﴾

**24**- (Cihûyan) Gotin: Ey Mûsa! Heta ku ew (sitemkar) li bajarê Qudsê bin, em ê qet neçinê. Nexwe de tu û Xwedayê xwe herin bi wan re şer bikin, bêguman em ê li vê derê rûniştî bin.

**25**- Mûsa got: Xwedayê min! Ez ji xwe û birayê xwe pê ve bi tu kesî (din) nikarim, êdî tu me û civata ku ji rê derketiye, ji hev cuda bike.

**26**- Xwedê Teala (ji Mûsa re) got: Êdî bajarê Qudsê heta çil salî li wan hate heramkirin. Di cihê xwe de ew ê li hev biherbilin. Nexwe tu, ji bo civata jirêderketî xemgîn mebe.

**27**- (Ya Muhemmed!) Ji wan re xebera rastîn a her du kurên Adem bixwîne, dema her duyan qurbanên xwe (ji Xwedê re) pêşkêş kirin, îcar ji yekî ji wan qurban hate qebûlkirin û ji yê din jî nehate qebûlkirin. (Birayê ku qurbana wî nehatibû qebûlkirin ji çavnebarî) Got: Sond be, ez ê te bikujim. Yê din got: Bêguman Xwedê, tenê ji teqwadaran qebûl dike.

**28**- Sond be! Eger tu destê xwe dirêjî min bikî da ku tu min bikujî, ez bi xwe ji bo kuştina te qet destên xwe dirêjî te nakim. Bêguman ez ji Xwedayê alemê ditirsim.

**29**- (Bi berdewamî got:) Bêguman ez dixwazim, tu bi gunehê (kuştina) min û bi gunehê xwe (yê berê) vegerî da ku tu bibî ji xelkê êgir û ev e cezayê zaliman.

**30**- Vêca nefsa wî kuştina birayê wî lê xweş anî û birayê xwe kuşt, êdî ew bû ji yên ku xisar kirin.

**31**- Xwedê qijikek şand ku wê bi nikil û lingên xwe ax dikola (û diavêt ser qijikeke mirî) da ku nîşanî wî bide ku ew dê termê (cesedê) birayê xwe çawa veşêre. (Birayê kujer) got: Wey li min be! Min nekarî ez bibim wekî vê qijika hanê vêca ku ez cendekê birayê xwe veşêrim, êdî ew bû ji poşmanbûyiyan!

Heke însan li pey hestên xwe yên çavnebarî here pêkan e ku ew bibe xeddarekî wisa ku bikare birayê xwe jî bikuje; lê encama vê li cîhanê poşmanî û jana wijdanê ye û li axretê jî cezayê wê agirê cansoj e. Mirovên çavnebar dikarin, tişta ku Xwedê daye wan wê nabînin lê qenciya ku daye dîgerên wan bes wê dibînin û kîna wan dixin dilê xwe. Birastî dermanê vê nexweşiyê ew e ku îslamê bi temamî bijî, xwe li gorî îslamê perwerde bike û bi ya nefsa xwe ya xêrnexwaz neke, heta ku nefsa wî bibe nefseke dilaram û qayîl. Mijareke din a girîng'ew e ku ev ayeta pîroz di heqê veşartina miriyan de jêder e. Tiştekî din ku divê ji bîra me neçe maneya vê hevokê ye: "Bû ji poşmanbûyiyan" yanî ne ew e; ji ber ku birayê xwe kuşt poşman bû. Lê ji ber ku nekariye bibe wekî qijikê û termê wî veşêre, poşman bû. Îbnî Ebbas gotiye: Heke ji ber ku birayê xwe kuştibû poşman bibûya wê çaxê poşmaniya wî dê jê re bibûya tobe.

مِنْ اَجْلِ ذٰلِكَۚ كَتَبْنَا عَلٰى بَنٖٓى اِسْرَٓائٖيلَ اَنَّهُ مَنْ قَتَلَ
نَفْسًا بِغَيْرِ نَفْسٍ اَوْ فَسَادٍ فِى الْاَرْضِ فَكَاَنَّمَا قَتَلَ
النَّاسَ جَمٖيعًاۜ وَمَنْ اَحْيَاهَا فَكَاَنَّمَٓا اَحْيَا النَّاسَ
جَمٖيعًاۜ وَلَقَدْ جَٓاءَتْهُمْ رُسُلُنَا بِالْبَيِّنَاتِ ثُمَّ اِنَّ
كَثٖيرًا مِنْهُمْ بَعْدَ ذٰلِكَ فِى الْاَرْضِ لَمُسْرِفُونَ ﴿٣٢﴾ اِنَّمَا
جَزٰٓؤُا الَّذٖينَ يُحَارِبُونَ اللّٰهَ وَرَسُولَهُ وَيَسْعَوْنَ فِى
الْاَرْضِ فَسَادًا اَنْ يُقَتَّلُٓوا اَوْ يُصَلَّبُٓوا اَوْ تُقَطَّعَ
اَيْدٖيهِمْ وَاَرْجُلُهُمْ مِنْ خِلَافٍ اَوْ يُنْفَوْا مِنَ الْاَرْضِۜ
ذٰلِكَ لَهُمْ خِزْىٌ فِى الدُّنْيَا وَلَهُمْ فِى الْاٰخِرَةِ عَذَابٌ
عَظٖيمٌۙ ﴿٣٣﴾ اِلَّا الَّذٖينَ تَابُوا مِنْ قَبْلِ اَنْ تَقْدِرُوا عَلَيْهِمْۚ
فَاعْلَمُٓوا اَنَّ اللّٰهَ غَفُورٌ رَحٖيمٌ ﴿٣٤﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذٖينَ اٰمَنُوا
اتَّقُوا اللّٰهَ وَابْتَغُٓوا اِلَيْهِ الْوَسٖيلَةَ وَجَاهِدُوا فٖى
سَبٖيلِهٖ لَعَلَّكُمْ تُفْلِحُونَ ﴿٣٥﴾ اِنَّ الَّذٖينَ كَفَرُوا لَوْ اَنَّ
لَهُمْ مَا فِى الْاَرْضِ جَمٖيعًا وَمِثْلَهُ مَعَهُ لِيَفْتَدُوا بِهٖ مِنْ
عَذَابِ يَوْمِ الْقِيٰمَةِ مَا تُقُبِّلَ مِنْهُمْۚ وَلَهُمْ عَذَابٌ اَلٖيمٌ ﴿٣٦﴾

يُرٖيدُونَ

32- Ha ji ber vê rûdanê ye ku me li ser zaroyên Îsraîl misoger kir ku; her kî mirovekî bi sitemkarî bikuje, vêca her wekî ku wî tevahiya mirovan kuştibe. Kî jî ku bibe sebebê xelasiya mirovekî, her wekî ku wî mirov tev xelas kiribin. Bêguman pêxemberên me delîlên ronker ji bo wan anîn, lê belê piştî vê jî, dîsa pirê wan li ser erdê xwînrêj in.

33- Bêguman ew ên ku li hember Xwedê û Pêxemberê wî şer dikin û fesadiyê li ser erdê derdixin, bes cezayê wan ev e ku bên kuştin an li çarmixê bêne xistin an dest û lingên wan çeperast bêne jêkirin an ji devera ku lê niştecih in bêne sirgûnkirin. Ha ev li vê dinyayê ji bo wan riswayî ye û li axretê jî ji bo wan ezabekî mezin heye.

34- Lê belê ew ên ku berî hûn wan bigirin tobe kiribin (ew cuda ne), vêca bizanin birastî jî Xwedê gunehjêbir e, dilovîn e.

Dînê Îslamê "**Kuştin**", li hemberî mirovatiyê sûc jimartiye û daye zanîn ku kesê bi neheqî mirovekî bikuje wekî ku wî mirovatî tev kuştibe. Ew bi qasî sûcê wî mezin e! Herwiha sûcê ku li hemberî kesên bêguneh û mehsûm were kirin, aramî û asayîşa mirovan xirab bike jî, sûcekî mezin dibîne û li hemberî Xwedê Teala û Pêxemberê wî wek îlana şer dinirxîne û li hemberî çete û talankeran cezane pir giran danîne. Digel ku di "bikaranîna" wan cezayan de mezheb û ramanên cuda cuda hene jî lêbelê li gorî piraniya alimên Îslamê ev yek halo ye: Heke çeteyên ku serî hildane û rahiştine çekan, sûcê wan kuştina mirovan tenê be, cezayê wan îdam e. Heke hem mirov kuştibin, hem jî xelk şelandibin, cezayê wan hem kuştin e, hem jî daleqandin e. Heke xelk şelandibin û tirs jî dabin wan lê tu kes nekuştibin, çep û rast destek û piyekî wan dê were jêkirin. Heke tenê xelk şelandibin dê bên koçberkirin. Hin aliman koçberî wek hepskirin jî rave kirîye. Heke çete bi xwe teslîm bibe û poşman bibe, ceza lê nayê xistin, lê mecbûr e ku zerar dabe kê, tezmînata wan bide.

35- Hey gelî yên ku bawerî anîne! Hay ji fermanên Xwedê hebin, li wesîleya (navgîna) ku we nêzî wî bike bigerin û di rêka wî de cîhadê bikin da ku hûn (li dinya û axretê) serfiraz bibin.

36- Bêguman ew ên kafir bûne, eger çi qas tiştên li ser erdê hene û bi qasî wan jî ew yên wan bin, ji bo ku bikin gerewa xwe di ber ezabê roja qiyametê de (da ku jê rizgar bibin), dê ev ji wan neyê qebûlkirin; ji bo wan her ezabekî bijan heye.

يريدون ان يخرجوا من النار وما هم بخارجين منها
ولهم عذاب مقيم ٣٧ والسارق والسارقة فاقطعوا
ايديهما جزاء بما كسبا نكالا من الله والله عزيز
حكيم ٣٨ فمن تاب من بعد ظلمه واصلح فان الله
يتوب عليه ان الله غفور رحيم ٣٩ الم تعلم ان الله
له ملك السموات والارض يعذب من يشاء ويغفر
لمن يشاء والله على كل شيء قدير ٤٠ يا ايها
الرسول لا يحزنك الذين يسارعون في الكفر من
الذين قالوا امنا بافواههم ولم تؤمن قلوبهم ومن
الذين هادوا سماعون للكذب سماعون لقوم اخرين
لم ياتوك يحرفون الكلم من بعد مواضعه يقولون
ان اوتيتم هذا فخذوه وان لم تؤتوه فاحذروا
ومن يرد الله فتنته فلن تملك له من الله شيئا
اولئك الذين لم يرد الله ان يطهر قلوبهم لهم في
الدنيا خزي ولهم في الاخرة عذاب عظيم ٤١

**37**- (Ew kafir) Dixwazin ku ji agir derkevin, lê belê ew dê nikaribin jê derên û ji wan re ezabekî seraqetî û her likar heye.

**38**- Ew mêr û jinên dizîker, vêca bi sebeb ku dizî kirine destên wan jê bikin. Ev cezakirin ji cem Xwedê ve bo vekişandinê ye (anku da tu kes diziyê neke ev ceza li wan tê birîn). Xwedê 'ezîz e, hekîm e.

**39**- Vêca kî piştî (vê) neheqiya li xwe kirî, poşman bibe û hal û tevgerên xwe rast bike, bêguman Xwedê dê tobeya wî qebûl bike. Bêguman Xwedê Teala gunehjêbir e, dilovîn e.

**40**- Ma tu nizanî (ey pêxember) ku bêguman ji Xwedê re ye selteneta erd û asîmanan; ew kê bivê dide ezabê û kê jî bivê lê dibore. Xwedê Teala li ser her tiştî qadir e.

**41**- Ey Pêxember! Bila ew ên ku di kafiriyê de bi hev re pêşbirkê dikin te xemgîn nekin; ew ên ku bi serê ziman dibêjin: "Me bawerî anî" hal ev e dilê wan bawerî neaniye û ji ew ên ku bûne cihû. Ew her guhdariya derewan dikin, ew guhdariya (hin) kesên din dikin ku ew (ji pozbilindiya xwe) nehatine cem te. Ew bêjeyan ji cihên wan diguherînin. (Ji hevalên xwe re) Dibêjin: Eger ev li gorî we (mîna ya we guhartî) be, vêca wê ji xwe re wergirin û eger ne li gorî we be, vêca xwe jê biparêzin. Kesê ku Xwedê, jirêketin û berzebûnê jê re bixwaze tu dê nikaribî li hemberî Xwedê tiştekî jê re bikî. Ev ên ha ew in ku Xwedê nexwestiye dilên wan (ji kufrê) paqij bike. Ji wan re li dinyayê riswatî û li axretê jî ezabekî mezin heye.

Digel ku şîret û hukmê vê ayeta pîroz gelemperî ye jî, lêbelê sedemekî daketina wê ya nemazeyî heye: Li Medîna Munewwer li nava cihûyan rûdaneke zinayê qewimî. Cihûyan di nava xwe de li ser rûdanê munaqeşe kirin û hinan ji wan got: Herin cem Muhemmed (s) heke ew ji bilî cezayê recmê cezayekî din bide, di cih de qebûl bikin û li cem Xwedê ew ji we re dê bibe delîl û behane. Gava hatin cem pêxemberî derhal hukm nekir, ew di bin zexteke manewî de hiştin, heta ku bi wan da îtîrafkirin ku li gorî Tewratê cezayê zinayê recm e û bi vî awayê hekîmane hîleya wan pûç kir. Li gorî rîwayeteke din ku ji Berra kurê Azib hatiye ragihandin: Di ber Pêxemberê Xwedê re cihûyekî bi rûreşkirinê cezakirî, derbas bû. Pêxember gazî wan kir, gote wan: Hûn cezayê zinayê di kitêba xwe de wiha dibînin? Gotin: Belê. Vêca gazî zanayekî cihûyan kir û jê re got: Ez te bi wî Xwedayê ku Tewrat ji Mûsa re şandiye didim sondê! Rast bibêje, hûn cezayê zinayê di kitêba xwe de wiha dibînin? Got: Na! Heke te ez bi vê sonda mezin nedabûma sondê min dê ji te re negota. Lê madem te ez dame sondê ez ê jî ji te re rast bibêjim; em di kitêba xwe de cezayê zinayê **recmê** dibînin. Lêbelê ji ber ku zina di nêva malmezinên me de pir zêde belav bû, vêca gava me malmezin digirtin, me dest jê berdida, gava me qels digirtin me cezayê recmê li wan tetbîq dikir. Ji loma me ji hev re got: Werin em cezayekî wisa qebûl bikin ku em wî li ser malmezin û qelsan wekhev tetbîq bikin. Vêca me li ser cezayê rûreşkirinê li hev kir û me ew danî şûna recmê. Vêca Qasidê Xwedê wiha got: Xwedayê min! Ez mirovê pêşîn im ku gava wan fermana te mirandiye, min ew sax kiriye. Êdî Pêxember emir kir, ew birin û recimandin. Vêca Xwedê di heqê vê mijarê de ev ayeta ku li jor borî nazil kir û mesele zelal kir.

سَمَّاعُونَ لِلْكَذِبِ اَكَّالُونَ لِلسُّحْتِ فَاِنْ جَٓاؤُكَ فَاحْكُمْ
بَيْنَهُمْ اَوْ اَعْرِضْ عَنْهُمْ وَاِنْ تُعْرِضْ عَنْهُمْ فَلَنْ يَضُرُّوكَ
شَيْـًٔا وَاِنْ حَكَمْتَ فَاحْكُمْ بَيْنَهُمْ بِالْقِسْطِ اِنَّ اللّٰهَ يُحِبُّ
الْمُقْسِطِينَ ﴿٤٢﴾ وَكَيْفَ يُحَكِّمُونَكَ وَعِنْدَهُمُ التَّوْرٰيةُ
فِيهَا حُكْمُ اللّٰهِ ثُمَّ يَتَوَلَّوْنَ مِنْ بَعْدِ ذٰلِكَ وَمَٓا اُولٰٓئِكَ
بِالْمُؤْمِنِينَ ﴿٤٣﴾ اِنَّٓا اَنْزَلْنَا التَّوْرٰيةَ فِيهَا هُدًى وَنُورٌ يَحْكُمُ
بِهَا النَّبِيُّونَ الَّذِينَ اَسْلَمُوا لِلَّذِينَ هَادُوا وَالرَّبَّانِيُّونَ
وَالْاَحْبَارُ بِمَا اسْتُحْفِظُوا مِنْ كِتَابِ اللّٰهِ وَكَانُوا
عَلَيْهِ شُهَدَٓاءَ فَلَا تَخْشَوُا النَّاسَ وَاخْشَوْنِ وَلَا تَشْتَرُوا
بِاٰيَاتٖي ثَمَنًا قَلِيلًا وَمَنْ لَمْ يَحْكُمْ بِمَٓا اَنْزَلَ اللّٰهُ
فَاُولٰٓئِكَ هُمُ الْكَافِرُونَ ﴿٤٤﴾ وَكَتَبْنَا عَلَيْهِمْ
فِيهَٓا اَنَّ النَّفْسَ بِالنَّفْسِ وَالْعَيْنَ بِالْعَيْنِ وَالْاَنْفَ
بِالْاَنْفِ وَالْاُذُنَ بِالْاُذُنِ وَالسِّنَّ بِالسِّنِّ وَالْجُرُوحَ
قِصَاصٌ فَمَنْ تَصَدَّقَ بِهٖ فَهُوَ كَفَّارَةٌ لَهُ وَمَنْ
لَمْ يَحْكُمْ بِمَٓا اَنْزَلَ اللّٰهُ فَاُولٰٓئِكَ هُمُ الظَّالِمُونَ ﴿٤٥﴾

وَقَفَّيْنَا

**42**- Ew pir guhdariya derewan dikin, pir heramxwer in (bertîl, riba û malê heram dixwin). (Ya Muhemmed!) Eger ew (ji bo çareserkirina gengeşeyekê) bên cem te, tu dixwazî di navbera wan de hukim bike, yan jî dev ji wan berde. Eger tu dev ji wan berdî jî ew neşên tu zerarê bidin te. Eger tu di navbera wan de hukim bikî vêca bi edaletî hukim bike (çendî ew zalim bin jî). Bêguman Xwedê ji mirovên adil hez dike.

**43**- Çawa ew qesda te dikin da ku tu di navbera wan de hukim bikî, hal ev e ku Tewrat li cem wan e û hukmê Xwedê (ka hukmê zinakarî çî ye) tê de ye, paşî pişta xwe didine hukmê te dayî (ew hukmê ku wekî yê Tewratê ye). Ev ên ha, ne ew in ku bawermend bin.

**44**- Bêguman Me Tewrat nazil kiriye ku tê de serwextî û ronahî heye. Pêxemberên ku xwe spartibûn Xwedê, ji bo cihûyan bi hukmê Tewratê hukim dikirin. Ji ber ku parastina kitêba Xwedê ji wan hatibû xwestin zana û zahidan jî (bi wê hukim dikir). Tev li ser (heqbûna) wê şahid bûn. (Gelî cihûyan!) Ji xelkê netirsin; ji min bitirsin. Ayetên min bi nirxekî hindik nefiroşin. Kî ku bi ya Xwedê nazil kiriye hukim neke vêca ew her kafir bi xwe ne.

**45**- Me di Tewratê de li ser îsraîliyan ferz kir ku (cezayê) can bi can e, çav bi çav e, poz bi poz e, guh bi guh e, diran bi diran e û di birînan de jî qisasiyet heye. Êdî kesê li (qisasiyetê) bibore vêca ew jê re kefaret e (hem ji kujer re hem ji xwedan mafî re jî kefaret e). Kî ku bi hukmê Xwedê nazil kiriye hukim neke, vêca ew her zalim bi xwe ne.

Di sê hêlan de li kesên ku bi qanûna Xwedê daxistiye hukm nekin, hatiye meyizandin: Ji ber ku maneya wê înkar kirine, ji wan re "**Kafir**" hatiye gotin. Ji ber ku hukmê Xwedê edalet e, dijî wê jî zulm e, ji wan re "**zalim**" hatiye gotin. Di ayeta 47-em de ji ber ku ji hukmê Xwedê derketine ji wan re "**fasiq**" hatiye gotin.

وَقَفَّيْنَا عَلٰٓى اٰثَارِهِمْ بِعِيسَى ابْنِ مَرْيَمَ مُصَدِّقًا لِمَا بَيْنَ يَدَيْهِ
مِنَ التَّوْرٰيةِ وَاٰتَيْنَاهُ الْاِنْجِيلَ فِيهِ هُدًى وَنُورٌ وَمُصَدِّقًا
لِمَا بَيْنَ يَدَيْهِ مِنَ التَّوْرٰيةِ وَهُدًى وَمَوْعِظَةً لِلْمُتَّقِينَ ﴿٤٦﴾
وَلْيَحْكُمْ اَهْلُ الْاِنْجِيلِ بِمَٓا اَنْزَلَ اللّٰهُ فِيهِ وَمَنْ لَمْ يَحْكُمْ
بِمَٓا اَنْزَلَ اللّٰهُ فَاُولٰٓئِكَ هُمُ الْفَاسِقُونَ ﴿٤٧﴾ وَاَنْزَلْنَٓا اِلَيْكَ
الْكِتَابَ بِالْحَقِّ مُصَدِّقًا لِمَا بَيْنَ يَدَيْهِ مِنَ الْكِتَابِ وَمُهَيْمِنًا
عَلَيْهِ فَاحْكُمْ بَيْنَهُمْ بِمَٓا اَنْزَلَ اللّٰهُ وَلَا تَتَّبِعْ اَهْوَٓاءَهُمْ
عَمَّا جَٓاءَكَ مِنَ الْحَقِّ لِكُلٍّ جَعَلْنَا مِنْكُمْ شِرْعَةً وَمِنْهَاجًا
وَلَوْ شَٓاءَ اللّٰهُ لَجَعَلَكُمْ اُمَّةً وَاحِدَةً وَلٰكِنْ لِيَبْلُوَكُمْ فِي مَٓا اٰتٰيكُمْ
فَاسْتَبِقُوا الْخَيْرَاتِ اِلَى اللّٰهِ مَرْجِعُكُمْ جَمِيعًا فَيُنَبِّئُكُمْ
بِمَا كُنْتُمْ فِيهِ تَخْتَلِفُونَ ﴿٤٨﴾ وَاَنِ احْكُمْ بَيْنَهُمْ بِمَٓا اَنْزَلَ اللّٰهُ
وَلَا تَتَّبِعْ اَهْوَٓاءَهُمْ وَاحْذَرْهُمْ اَنْ يَفْتِنُوكَ عَنْ بَعْضِ مَٓا اَنْزَلَ اللّٰهُ
اِلَيْكَ فَاِنْ تَوَلَّوْا فَاعْلَمْ اَنَّمَا يُرِيدُ اللّٰهُ اَنْ يُصِيبَهُمْ بِبَعْضِ
ذُنُوبِهِمْ وَاِنَّ كَثِيرًا مِنَ النَّاسِ لَفَاسِقُونَ ﴿٤٩﴾ اَفَحُكْمَ
الْجَاهِلِيَّةِ يَبْغُونَ وَمَنْ اَحْسَنُ مِنَ اللّٰهِ حُكْمًا لِقَوْمٍ يُوقِنُونَ ﴿٥٠﴾

**46**- Me Îsayê kurê Meryemê li ser şopa pêxemberan şand ku ew ji Tewrata beriya xwe re rastdêr e. Me Incîl jî dayê ku tê de hîdayet û ronahî heye û Tewrata beriya xwe rast didêre û ji teqwadaran re jî rêber û şîret e.

**47**- Bila xwediyên Incîlê (fileh) bi ya ku Xwedê tê de aniye (ser wan) hukim bikin. Kî ku bi hukmê Xwedê nazil kiriye hukim neke, vêca ew her fasiq bi xwe ne.

**48**- Me Qur'an bi bal te ve bi heqî hinart ku ew ji bo kitêbên beriya xwe rastdêr e û li ser wan çavdêr e. Êdî li gorî wehya ku Xwedê ji bo te hinartî di navbera wan de hukim bike û li şûna heqiya ku ji te re hatî nede dûv hewesên wan. Me, ji bo her yekî ji we şerî'et û rêbazek daniye. Eger Xwedê bixwesta dê hûn tev yek umet çêbikira. Lê belê (me hûn kirine umetên cur bi cur) da ku we der heqê rêç û rêbaza ku dayî de we biceribîne. Nexwe di qenciyê de pêşbirkê bikin. (Gelî mirovan!) Vegera we hemûyan bi bal Xwedê ve ye. Êdî bi ya ku hûn tê de bi hev ketine, ew dê we agahdar bike.

Umet û milletên ku bi Xwedê bawerî anîne û bûne umetên pêxemberan di şûna ku ji bo ramanên cuda, siyaset û berjewendiyan de bi hev bikevin, serê hev bixwin, bila di qenciya ku pêxemberan ji wan re ragihandine de bi hev re pêşbaziyê bikin, cîhanê ava bikin, di hedefên xêrê de arî hev bikin.

**49**- (Ya Muhemmed! Me Qur'an ji te re hinart) Tu jî di navbera wan de bi ya ku Xwedê hinartî hukim bike û nede pey hewesên wan. Hay ji xwe hebe da ew te ji hinekî ji wehya ku Xwedê daxistiye te jê bidin paş. Eger ew berê xwe ji (hukmê) te biguherînin, vêca bizane ku (bi vê bizava wan) Xwedê dixwaze bi sedema hin gunehên ku kirine wan ceza bike. Bêguman pir ji mirovan hene ku her ji rê derketine.

**50**- Erê ma ew hukmê cahiliyetê dixwazin (ne hukmê Xwedê)? Ma qey ji bo civateke ku baş têbigihîje, hukmê kê ji yê Xwedê Teala spehîtir e?!

حزب

يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا لَا تَتَّخِذُوا الْيَهُودَ وَالنَّصَارٰٓى اَوْلِيَٓاءَۢ بَعْضُهُمْ
اَوْلِيَٓاءُ بَعْضٍۜ وَمَنْ يَتَوَلَّهُمْ مِنْكُمْ فَاِنَّهُ مِنْهُمْۜ اِنَّ اللّٰهَ لَا يَهْدِي الْقَوْمَ
الظَّالِم۪ينَ ﴿٥١﴾ فَتَرَى الَّذ۪ينَ ف۪ي قُلُوبِهِمْ مَرَضٌ يُسَارِعُونَ ف۪يهِمْ يَقُولُونَ
نَخْشٰٓى اَنْ تُص۪يبَنَا دَٓائِرَةٌۜ فَعَسَى اللّٰهُ اَنْ يَأْتِيَ بِالْفَتْحِ اَوْ اَمْرٍ مِنْ عِنْدِه۪
فَيُصْبِحُوا عَلٰى مَٓا اَسَرُّوا ف۪ٓي اَنْفُسِهِمْ نَادِم۪ينَۜ ﴿٥٢﴾ وَيَقُولُ الَّذ۪ينَ
اٰمَنُٓوا اَهٰٓؤُ۬لَٓاءِ الَّذ۪ينَ اَقْسَمُوا بِاللّٰهِ جَهْدَ اَيْمَانِهِمْۙ اِنَّهُمْ لَمَعَكُمْۜ حَبِطَتْ
اَعْمَالُهُمْ فَاَصْبَحُوا خَاسِر۪ينَ ﴿٥٣﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا مَنْ يَرْتَدَّ مِنْكُمْ
عَنْ د۪ينِه۪ فَسَوْفَ يَأْتِي اللّٰهُ بِقَوْمٍ يُحِبُّهُمْ وَيُحِبُّونَهُٓۙ اَذِلَّةٍ عَلَى الْمُؤْمِن۪ينَ
اَعِزَّةٍ عَلَى الْكَافِر۪ينَۘ يُجَاهِدُونَ ف۪ي سَب۪يلِ اللّٰهِ وَلَا يَخَافُونَ لَوْمَةَ
لَٓائِمٍۜ ذٰلِكَ فَضْلُ اللّٰهِ يُؤْت۪يهِ مَنْ يَشَٓاءُۜ وَاللّٰهُ وَاسِعٌ عَل۪يمٌ ﴿٥٤﴾
اِنَّمَا وَلِيُّكُمُ اللّٰهُ وَرَسُولُهُ وَالَّذ۪ينَ اٰمَنُوا الَّذ۪ينَ يُق۪يمُونَ الصَّلٰوةَ
وَيُؤْتُونَ الزَّكٰوةَ وَهُمْ رَاكِعُونَ ﴿٥٥﴾ وَمَنْ يَتَوَلَّ اللّٰهَ وَرَسُولَهُ وَالَّذ۪ينَ
اٰمَنُوا فَاِنَّ حِزْبَ اللّٰهِ هُمُ الْغَالِبُونَ ﴿٥٦﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا لَا تَتَّخِذُوا
الَّذ۪ينَ اتَّخَذُوا د۪ينَكُمْ هُزُوًا وَلَعِبًا مِنَ الَّذ۪ينَ اُو۫تُوا الْكِتَابَ
مِنْ قَبْلِكُمْ وَالْكُفَّارَ اَوْلِيَٓاءَۚ وَاتَّقُوا اللّٰهَ اِنْ كُنْتُمْ مُؤْمِن۪ينَ ﴿٥٧﴾

وَاِذَا

51- Hey gelî yên bawerî anîne! Cihû û filehan ji xwe re nekin dost û piştevan. Ew xwe bi xwe ji hev re dost û piştek in. Kî ji we, wan ji xwe re bike dost û arîkar, vêca ew jî ji wan e. Bêguman Xwedê civata sitemkar serwext nake.

52-Vêca tu wan kesên ku di dilê wan de nexweşîn heye dibînî ku li hevalbendiya wan (ên cihû û fileh) lez dikin. Dibêjin (eger misliman têk herin, vêca) em ditirsin ku karesateke mezin dê bi serê me de bê. Vêca hêvî heye ku Xwedê rizgarî yan jî serkeftinekê ji nik xwe ji bo mislimanan bîne; êdî li ser a ku wan di dilê xwe de veşartibû dê poşman bibin.

53- Ew ên ku bawerî anîn dê bibêjin: “Ma ev ê han in, ew ên ku sondên asê dixwarin ku ew bi tevekê hêza xwe bi we re ne?” Kirinên wan tev pûç bûne û ew bûne ji yên ku ziyan kirine.

54- Hey gelî yên ku bawerî anîne! Ji we kî ji dînê xwe vegere (bila bizane ku) Xwedê, dê civateke wisa (di şûna wan de) bîne ku Xwedê ji wan hez dike ew jî ji wî hez dikin, der barê mumînan de dilnerm (û bişefqet) in û der barê kafiran de jî xurt û serbilind in, di rêka Xwedê de cîhadê dikin û ji gazindên gazindkeran jî natirsin. Ev pirdayîna Xwedê ye, ew kê bivê dide wî. Xwedê (bi kerema xwe) destfireh e, zana ye.

Divê ev heqîqet ji bîra me hîç neçe ku ji roja îslamê rûmet daye cîhanê û pê de tu caran alaya îslamê neketiye erdê, her tim hin civatan alaya wê hilgirtiye û di rêya wê de şer kiriye, têkoşiyaye. Heta ku li ser rûyê erdê mirov hebin, her û her ji umeta îslamê yê ku di oxira wê de şer bikin, alaya wê hilgirin û xwe di ber wê de bikin gorî, dê bên dîtin û her dê hebin.

55- Bêguman dost û arîkarê we tenê Xwedê ye, Pêxemberê wî ye û yên ku bawerî anîne; ew ên ku bi berdewamî nimêj dikin, zekata malê xwe didin û ew her (li ber fermana Xwedê) xwe ditewînin.

56- Kî ku Xwedê, Pêxemberê wî û yên ku bawerî anîne ji xwe re bike dost û arîkar (ew ji benda Xwedê ne); vêca benda Xwedê, bi rastî ew bi xwe ne yên desthilatdar.

57- Hey gelî yên ku bawerî anîne! Hûn, ji ehlê kitêbên beriya xwe û ji wan kafirên ku wan dînê we ji xwe re kirine tinaz û pêlîstok ji bo xwe nekin dost û piştevan. Ji Xwedê bitirsin eger bi rastî hûn bawermend in.

وَاِذَا نَادَيْتُمْ اِلَى الصَّلٰوةِ اتَّخَذُوهَا هُزُوًا وَلَعِبًا ذٰلِكَ بِاَنَّهُمْ قَوْمٌ
لَا يَعْقِلُونَ ٥٨ قُلْ يَٓا اَهْلَ الْكِتَابِ هَلْ تَنْقِمُونَ مِنَّٓا اِلَّٓا اَنْ اٰمَنَّا بِاللّٰهِ
وَمَٓا اُنْزِلَ اِلَيْنَا وَمَٓا اُنْزِلَ مِنْ قَبْلُ وَاَنَّ اَكْثَرَكُمْ فَاسِقُونَ ٥٩ قُلْ
هَلْ اُنَبِّئُكُمْ بِشَرٍّ مِنْ ذٰلِكَ مَثُوبَةً عِنْدَ اللّٰهِ مَنْ لَعَنَهُ اللّٰهُ وَغَضِبَ عَلَيْهِ
وَجَعَلَ مِنْهُمُ الْقِرَدَةَ وَالْخَنَازِيرَ وَعَبَدَ الطَّاغُوتَ اُولٰٓئِكَ شَرٌّ
مَكَانًا وَاَضَلُّ عَنْ سَوَٓاءِ السَّبِيلِ ٦٠ وَاِذَا جَٓاؤُكُمْ قَالُوٓا اٰمَنَّا
وَقَدْ دَخَلُوا بِالْكُفْرِ وَهُمْ قَدْ خَرَجُوا بِهِ وَاللّٰهُ اَعْلَمُ بِمَا كَانُوا
يَكْتُمُونَ ٦١ وَتَرٰى كَثِيرًا مِنْهُمْ يُسَارِعُونَ فِي الْاِثْمِ وَالْعُدْوَانِ
وَاَكْلِهِمُ السُّحْتَ لَبِئْسَ مَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ٦٢ لَوْلَا يَنْهٰيهُمُ الرَّبَّانِيُّونَ
وَالْاَحْبَارُ عَنْ قَوْلِهِمُ الْاِثْمَ وَاَكْلِهِمُ السُّحْتَ لَبِئْسَ مَا كَانُوا يَصْنَعُونَ
٦٣ وَقَالَتِ الْيَهُودُ يَدُ اللّٰهِ مَغْلُولَةٌ غُلَّتْ اَيْدِيهِمْ وَلُعِنُوا بِمَا قَالُوا بَلْ
يَدَاهُ مَبْسُوطَتَانِ يُنْفِقُ كَيْفَ يَشَٓاءُ وَلَيَزِيدَنَّ كَثِيرًا مِنْهُمْ مَٓا اُنْزِلَ
اِلَيْكَ مِنْ رَبِّكَ طُغْيَانًا وَكُفْرًا وَاَلْقَيْنَا بَيْنَهُمُ الْعَدَاوَةَ وَالْبَغْضَٓاءَ
اِلٰى يَوْمِ الْقِيٰمَةِ كُلَّمَٓا اَوْقَدُوا نَارًا لِلْحَرْبِ اَطْفَاَهَا اللّٰهُ
وَيَسْعَوْنَ فِي الْاَرْضِ فَسَادًا وَاللّٰهُ لَا يُحِبُّ الْمُفْسِدِينَ ٦٤

**58**- Dema hûn ji bo nimêjê bang didin ew tinaz û yariyê xwe pê dikin. Ev a ku dikin, ji ber ku ew bi xwe civateke bîrnebir û bêhiş in.

**59**- Bibêje: Gelî yên xweykitêb! Qey bi sedema ku me bi Xwedê, bi ya ku ji me re hatiye û bi ya ku ji umetên berê re hatiye hinartin, bawerî aniye, hûn ji me hez nakin? Bi rastî pirê we ji rêka heq derketî ne.

Ji Îbnu Ebbas hatiye ragihandin: Civateke cihûyan hat cem Pêxemberê Xwedê Teala û jê pirsî, ka ew baweriyê bi kîjan pêxemberan tîne? Got: Ez baweriyê bi Ellah Teala, bi wehya ku ji me re hatiye şandin û bi wehya ku ji Îbrahîm û ji Îsmaîl re hatiye şandin tînim û pê de çû, heta ku gihaşt hevoka, "Em ji Xwedê re teslîm bûne." Çi dema behsa Îsayî kir pêxemberiya wî mandel kirin û gotin: Qesem bi navê Xwedê be, em ehlê dînekî din nizanin ku ji aliyê para dinyayê û axretê ve para wan ji para we hindiktir be! Em ji aliyê nebaşî ve jî dînekî din ku ji dînê we nebaştir be nizanin! Ji loma Xwedê Teala ronahî anî ser vê mijarê û ayet daxist.

**60**- (Ya Muhemmed!) Bibêje: Erê, ma ez ji we re bibêjim ka li cem Xwedê ji van (fasiqan) xerabtir û riswatir kî ye? Ew, yê ku Xwedê lanet lêkiriye û yê ku lêhêrsbûye; ew ên ku hin ji wan xistine meymûn û beraz û ew ebdîniya taxûtî dikin. Ha ew, pîstirîn cih ji bo wan e û ji rêka rast bêhtir şaşbûyî ne.

**61**- Dema ew (munafiq) tên cem we, dibêjin: Me bawerî aniye. Hal ev e ku ew dilkafir hatine cem we û dilkafir jî ji cem we derketine. Xwedê bi ya ku wan vedişart bêhtir dizane.

**62**- Tu pirê wan dibînî ku ew di guneh, dijminahî û heramxweriyê de pêşbaziyê dikin, bi rastî ya ku ew dikin çi qas pîs e!

**63**- De bila xwedênas û haxamên wan ji gotina biguneh û heramxweriyê ew bidana paş! Bi rastî ya ku ew dikin çi qas pîs e!

**64**- Cihûyan got: Xwedê Teala destgirtî ye (cikûs e) -destên wan şeht bibe û ji ber vê gotina wan lanet li wan bibare-. Nexêr, ne wisan e, belkî destên Xwedê (bi dayîna xwe) vekirî ne, ew çawa bivê wisa dide. (Ya Muhemmed!) Sond be, ya ku ji nik Xwedayê te, ji te re hatiye hinartin dê kufr û çavsoriya piraniya wan zêde bike. Me kîn û neyartiyeke wisa xistiye nav wan ku heta roja qiyametê berdewam e. Çi dema wan ji bo cengê agirek vêxistibe, Xwedayê Teala her ew agir vemirandiye. Ew li ser erdê ji bo tevdanê dibezin, Xwedê jî ji tevdankeran hez nake.

وَلَوْ اَنَّ اَهْلَ الْكِتَابِ اٰمَنُوا وَاتَّقَوْا لَكَفَّرْنَا عَنْهُمْ سَيِّـَٔاتِهِمْ
وَلَاَدْخَلْنَاهُمْ جَنَّاتِ النَّع۪يمِ ﴿٦٥﴾ وَلَوْ اَنَّهُمْ اَقَامُوا التَّوْرٰيةَ
وَالْاِنْج۪يلَ وَمَٓا اُنْزِلَ اِلَيْهِمْ مِنْ رَبِّهِمْ لَاَكَلُوا مِنْ فَوْقِهِمْ
وَمِنْ تَحْتِ اَرْجُلِهِمْ مِنْهُمْ اُمَّةٌ مُقْتَصِدَةٌ وَكَث۪يرٌ مِنْهُمْ سَٓاءَ
مَا يَعْمَلُونَ ﴿٦٦﴾ يَٓا اَيُّهَا الرَّسُولُ بَلِّغْ مَٓا اُنْزِلَ اِلَيْكَ مِنْ رَبِّكَ
وَاِنْ لَمْ تَفْعَلْ فَمَا بَلَّغْتَ رِسَالَتَهُ وَاللّٰهُ يَعْصِمُكَ مِنَ النَّاسِ
اِنَّ اللّٰهَ لَا يَهْدِي الْقَوْمَ الْكَافِر۪ينَ ﴿٦٧﴾ قُلْ يَٓا اَهْلَ الْكِتَابِ
لَسْتُمْ عَلٰى شَيْءٍ حَتّٰى تُق۪يمُوا التَّوْرٰيةَ وَالْاِنْج۪يلَ وَمَٓا اُنْزِلَ
اِلَيْكُمْ مِنْ رَبِّكُمْ وَلَيَز۪يدَنَّ كَث۪يرًا مِنْهُمْ مَٓا اُنْزِلَ اِلَيْكَ
مِنْ رَبِّكَ طُغْيَانًا وَكُفْرًا فَلَا تَاْسَ عَلَى الْقَوْمِ الْكَافِر۪ينَ ﴿٦٨﴾
اِنَّ الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَالَّذ۪ينَ هَادُوا وَالصَّابِؤُ۫نَ وَالنَّصَارٰى
مَنْ اٰمَنَ بِاللّٰهِ وَالْيَوْمِ الْاٰخِرِ وَعَمِلَ صَالِحًا فَلَا خَوْفٌ
عَلَيْهِمْ وَلَا هُمْ يَحْزَنُونَ ﴿٦٩﴾ لَقَدْ اَخَذْنَا م۪يثَاقَ بَن۪ٓي
اِسْرَٓائ۪يلَ وَاَرْسَلْنَٓا اِلَيْهِمْ رُسُلًا كُلَّمَا جَٓاءَهُمْ رَسُولٌ بِمَا
لَا تَهْوٰٓى اَنْفُسُهُمْ فَر۪يقًا كَذَّبُوا وَفَر۪يقًا يَقْتُلُونَ ﴿٧٠﴾

وَحَسِبُٓوا

**65**- Eger ên xweykitêb bawerî (bi Muhemmed) bianiya û xwe (ji kufr û neqenciyê) biparastina, teqez me dê gunehên wan (yên borî) veşartina û misoger me dê ew bixistina bihiştên têrxweşî.

**66**- Eger wan Tewrat, Incîl û wehya (Qur'an a) ku ji cem Xwedayê wan ji wan re hatiye şandin ragirtibûya û bi kar anîbûna, teqez wan dê ji raserî xwe û ji bin xwe ve bixwarana (riziq ji bo wan dê hêsan bûya). Ji wan civatek heye mutedil in (navincî ne) û gelek ji wan jî çi pîs e ya ku dikin!

Milletên ku bibin dîndar û dîn tetbîq bikin, li gorî fermanên dînî tevbigerin ew dê bigihîjin zirweya bextiyarî û hizûra aborî û şaristanîyê. Lêbelê milletên ku dest ji dîn berdidin û li pey felsefeya berjewendiyên xwe dilivin, xwîna milletên din di-mijin û bi xurtî dikin, ew dibin sersebebên şeran, malwêranî, paşvemayîna aborî û şaristanî, birçîbûnî û komkujiyan. Heke her kes serê xwe ji hukumdariya Xwedê re deyne, li ser erdê zulm û neheqî dê li tu kesî neyê kirin, her kes dê bigihîje mafê xwe yê rewa, her kes dê ji riyên rewa li bereket, dewlemendî û bextewariyê bigere, ha wê çaxê ji asîman ni'met dê li ser xelkê bibarin, destferehî û bereket dê çêbibe û zengînî dê verêje ser erdê.

**67**- Ey Pêxember! Wehya ku ji cem Xwedayê te, ji te re hatiye şandin rabigihîne. Eger tu bi tekûzî pêk neyînî, vêca te peyxama Xweda ranegihandiye. Xwedê dê te ji (neqenciya) mirovan biparêze. Bêguman Xwedê civata kafir serwext nake.

**68**- Bibêje: Gelî yên xweykitêb! Heta ku hûn bi rastî û duristî Tewratê, Incîlê û Qur'ana ku ji cem Xwedayê we ji we re hatiye hinartin (di jiyanê de) bi kar neyînin, hûn ne li ser tu tiştî ne. Sond be, Qur'ana ku ji cem Rebê te ji te re hatiye şandin dê kufr û çavsoriya pirên wan zêde bike. Nexwe tu ji bo wan xemgîn mebe.

**69**- Bêguman ew ên ku (bi fitreta xwe) bawerî anîne û ew ên ku bûne cihû, yên melekperest yan jî stêrperest û yên ku bûne fileh, vêca (piştî şandina Muhemmed bi pêxemberî) kî ji wan bi Xwedê Teala û roja axretê baweriyê bîne û karekî qenc bike (bibe peyrewê Pêxember), ji bo wan li nik Xwedayê wan xelat heye û ji wan re tirs nîn e û ew xemgîn jî nabin.

**70**- Bêguman me ji zarokên Îsraîl peymana mikûmkirî wergirt û me ji wan re qasid şandin. Çi dema pêxemberek ya ne bi dilê wan ji bo wan dianî, hin ji wan (pêxemberan) mandel kirin û hin ji wan jî dikuştin.

وَحَسِبُٓوا اَلَّا تَكُونَ فِتْنَةٌ فَعَمُوا وَصَمُّوا ثُمَّ تَابَ اللّٰهُ
عَلَيْهِمْ ثُمَّ عَمُوا وَصَمُّوا كَث۪يرٌ مِنْهُمْۜ وَاللّٰهُ بَص۪يرٌ بِمَا
يَعْمَلُونَ ﴿٧١﴾ لَقَدْ كَفَرَ الَّذ۪ينَ قَالُٓوا اِنَّ اللّٰهَ هُوَ
الْمَس۪يحُ ابْنُ مَرْيَمَۜ وَقَالَ الْمَس۪يحُ يَا بَن۪ٓي اِسْرَٓائ۪يلَ
اعْبُدُوا اللّٰهَ رَبّ۪ي وَرَبَّكُمْۜ اِنَّهُ مَنْ يُشْرِكْ بِاللّٰهِ فَقَدْ
حَرَّمَ اللّٰهُ عَلَيْهِ الْجَنَّةَ وَمَأْوٰيهُ النَّارُۜ وَمَا لِلظَّالِم۪ينَ
مِنْ اَنْصَارٍ ﴿٧٢﴾ لَقَدْ كَفَرَ الَّذ۪ينَ قَالُٓوا اِنَّ اللّٰهَ ثَالِثُ
ثَلٰثَةٍ وَمَا مِنْ اِلٰهٍ اِلَّٓا اِلٰهٌ وَاحِدٌۜ وَاِنْ لَمْ يَنْتَهُوا عَمَّا
يَقُولُونَ لَيَمَسَّنَّ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا مِنْهُمْ عَذَابٌ اَل۪يمٌ ﴿٧٣﴾
اَفَلَا يَتُوبُونَ اِلَى اللّٰهِ وَيَسْتَغْفِرُونَهُۜ وَاللّٰهُ غَفُورٌ
رَح۪يمٌ ﴿٧٤﴾ مَا الْمَس۪يحُ ابْنُ مَرْيَمَ اِلَّا رَسُولٌۚ قَدْ خَلَتْ
مِنْ قَبْلِهِ الرُّسُلُۜ وَاُمُّهُ صِدّ۪يقَةٌۜ كَانَا يَأْكُلَانِ الطَّعَامَۜ
اُنْظُرْ كَيْفَ نُبَيِّنُ لَهُمُ الْاٰيَاتِ ثُمَّ انْظُرْ اَنّٰى يُؤْفَكُونَ
﴿٧٥﴾ قُلْ اَتَعْبُدُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ مَا لَا يَمْلِكُ لَكُمْ
ضَرًّا وَلَا نَفْعًاۜ وَاللّٰهُ هُوَ السَّم۪يعُ الْعَل۪يمُ ﴿٧٦﴾

71- Ji wan we ye ku tu bela dê bi serê wan de neyê, êdî ew (ji ber ya anîn serê pêxemberan û ji ber ku peymana xwe şikandin ji rastiyê) ker û kor bûn. Paşî (tobe kirin) Xwedê tobeya wan qebûl kir, dûvre dîsa ji wan pir kes kor û ker bûn. Xwedê Teala bi ya ku ew dikin bîner e.

72- Sond be, ew ên gotin: Xweda, Mesîhê kurê Meryemê ye, (ew bi vê gotina xwe) kafir bûne. Hal ev e ku Mesîh ji wan re gotibû: Gelî zaroyên Îsraîl! Ji Xwedê Teala re îbadetê bikin ku ew hem Xwedayê min hem jî Xwedayê we ye. Bizanin ku kî ji Xwedê re hevparan çêke, teqez Xwedê Teala dê cenetê li wî heram bike, êdî cihê wî agir e û ji sitemkaran re tu arîkar jî tune ne.

73- Sond be, ew ên gotin: "Ellah Teala, yek ji siseyan e" jî kafir bûne. Hal ev e ku ji yek Xwedayî pê ve tu Xweda nîn in. Eger ew dev ji gotina xwe ya teslîsê (sê xwedayîtiyê) bernedin (ew kafir dibin). Bi rastî ezabekî dijwar dê bihingive wan ên ku kafir bûne.

74- Ma ew ê bi bal Xwedê Teala ve tobe nekin û lêborîna (gunehên) xwe jê nexwazin?! Hal ev e ku Xwedê Teala gunehjêbir e, dilovîn e.

75- Mesîhê kurê Meryemê tenê pêxemberek e! Di beriya wî de pir pêxember hatine û çûne. Dayîka wî jî jineke rast û durist e. Her dukan jî xwarin dixwarin (û vedixwarin). De ka li wan binêre, ka çawa em ji bo wan delîlan aşkera dikin (li ser gotina wan a der heqê Îsa û dayîka wî de). Dîsa, de ka li wan bimeyzîne, bê çawa ew berê xwe (ji heqîqetê) diguherînin.

Cihû, bawer nakin ku Îsa ji dayîkeke qîz û binamûs çêbûye. Belkî bêbextiyê li dayîka wî dikin û îddîa dikin ku ew ji têkiliyeke nerewa çêbûye. Qur'ana Pîroz, hê berê ka çawa Îsa bi awayekî mucîzewî hatiye afirandin dabû zanîn. Li virê jî bêbextiya cihûyên red dike û bi zimanekî zelal û safî eşkere dike ku Meryema dayîka Îsa, xanimeke rast, durist, dilsoz, bi îffet û bi namûs e. Herwiha Qur'ana Pîroz bi delîleke zelal û vebirî iddîaya filehan a ku wesfê Xwedatiyê didin Îsa û diya wî jî pûç û weza dike.

76- (Ya Muhemmed! Ji wan re) Bibêje: Ma hûn çawa di şûna Ellah Teala de îbadetê ji wî re dikin ku ew ne dikare zerarê bide we, ne jî dikare feydeyê bide?! Hal ev e ku Xwedê Teala, ew e yê bihîzer, ew e yê zana.

قُلْ يَٓا اَهْلَ الْكِتَابِ لَا تَغْلُوا فٖي دٖينِكُمْ غَيْرَ الْحَقِّ
وَلَا تَتَّبِعُٓوا اَهْوَٓاءَ قَوْمٍ قَدْ ضَلُّوا مِنْ قَبْلُ وَاَضَلُّوا
كَثٖيرًا وَضَلُّوا عَنْ سَوَٓاءِ السَّبٖيلِ ﴿٧٧﴾ لُعِنَ الَّذٖينَ
كَفَرُوا مِنْ بَنٖٓي اِسْرَٓائٖيلَ عَلٰى لِسَانِ دَاوُ۫دَ
وَعٖيسَى ابْنِ مَرْيَمَ ذٰلِكَ بِمَا عَصَوْا وَكَانُوا يَعْتَدُونَ
﴿٧٨﴾ كَانُوا لَا يَتَنَاهَوْنَ عَنْ مُنْكَرٍ فَعَلُوهُ لَبِئْسَ مَا كَانُوا
يَفْعَلُونَ ﴿٧٩﴾ تَرٰى كَثٖيرًا مِنْهُمْ يَتَوَلَّوْنَ الَّذٖينَ كَفَرُوا
لَبِئْسَ مَا قَدَّمَتْ لَهُمْ اَنْفُسُهُمْ اَنْ سَخِطَ اللّٰهُ
عَلَيْهِمْ وَفِي الْعَذَابِ هُمْ خَالِدُونَ ﴿٨٠﴾ وَلَوْ كَانُوا
يُؤْمِنُونَ بِاللّٰهِ وَالنَّبِيِّ وَمَٓا اُنْزِلَ اِلَيْهِ مَا اتَّخَذُوهُمْ
اَوْلِيَٓاءَ وَلٰكِنَّ كَثٖيرًا مِنْهُمْ فَاسِقُونَ ﴿٨١﴾ لَتَجِدَنَّ
اَشَدَّ النَّاسِ عَدَاوَةً لِلَّذٖينَ اٰمَنُوا الْيَهُودَ وَالَّذٖينَ
اَشْرَكُوا وَلَتَجِدَنَّ اَقْرَبَهُمْ مَوَدَّةً لِلَّذٖينَ
اٰمَنُوا الَّذٖينَ قَالُٓوا اِنَّا نَصَارٰى ذٰلِكَ بِاَنَّ
مِنْهُمْ قِسّٖيسٖينَ وَرُهْبَانًا وَاَنَّهُمْ لَا يَسْتَكْبِرُونَ ﴿٨٢﴾

وَاِذَا

77- Bibêje: Gelî yên xwedîkitêb! Di dînê xwe de bi neheqî sînor derbas nekin û nedin pey arezûyên civatekê ku ew hê ji berê de ji rê ketine, pir kes ji rê deranîne û ji riya rast dûr bûne.

78- Ji Îsraîliyan ew ên ku kafir bûne, li ser zimanê Dawud û Îsayê kurê Meryemê lanet li wan hatiye barandin. Ev jî bi sedema ku li ber fermana Xwedê serî hildan û zêdegavî dikirin.

79- Wan, ji neqenciya ku dikirin hev nedidan paş. Çi qas pîs e ya ku wan dikir!

80- Tu dê pirên wan bibînî ku ew kafiran ji xwe re dikin dost û piştevan. Çi pîs kar e ya ku wan daye pêşiya xwe. Rewş ev e ku Xwedê li wan hatiye xezebê û heta bi hetayê ew dê di ezab de bimînin.

81- Eger wan bawerî bi Ellah Teala, bi pêxember û bi Qur'ana ku jê re hatiye hinartin bianiya, wan dê kafir ji xwe re nekirina dost û piştevan; lê belê zehfên wan ji rêderketî ne.

82- (Ya Muhemmed) Sond be, li hemberî yên ku bawerî bi te anîn, tu yê bibînî ku ji mirovan ên herî dijmin û bixişm cihû ne û ew ên ku ji Xwedê re hevpişk çêkirine. Û tu dê bibînî li hemberî yên ku bi te bawerî anîn, ê ji hezjêkirin ve nêzîktir, ew ên ku dibêjin em nesara ne (arîkarên Îsa pêxember in). Ev jî, bi sedema wê ye ku ji wan keşîş (zanayên dînê xwe) û rahib (abid) hene û ew xwe mezin naderin.

Di bara nazilbûna vê ayeta pîroz de hin tefsîrzanan wiha gotiye: Ji Hebeşistanê şandeyeke Necaşî hat bal Pêxember (s) . Çi gava Pêxember ji wan re Sûreyê "Yasîn" xwend, çavên wan hêsir barandin, di cih de misliman bûn û gotin: "Çi qasî ev dişibe peyxama ku ji Îsa re hatiye!" Vêca ev ayeta pîroz, di heqê vê mijarê de nazil bû. Hin tefsîrzanan gotiye: Ev filehên Hebeşistanê ne; ewên ku deriyên xwe li muhacirên misliman vekiribûn û li derdê mislimanan guhdarî kiribûn. Hin tefsîrzanan jî gotiye; ev filehên Necranê ne: Ewên ku hatine bi Pêxember re peyman çêkirine. Lêbelê ev rastiyeke wisa bê nîqaş e ku ji cihû û filehan, fileh bêhtir nêzîkî mislimanan e. Her çiqas di mêjûya îslamê de hatiye dîtin ku "filehên fanatîk û serhişk hêza xwe anîne ser hev û bi navê: "Seferên Xaçperestan" êrîşên talankerî û hovane anîne ser cîhana îslamî, welatên mislimanan kavil û wêran kirine, bi sed hezaran kesên mumin kuştine, weke cokê xwîna keç û kur, jin û zaro, kal û ciwanan rêhtine. Lêbelê digel vê yekê jî, ji xrîstiyanan hin keşîş û rahibên wan destên xwe ji dinyayê kêşane. Ev û yên ku di binê tesîra van de mane hinekî nêzî îslamê sekinîne. Pir keşîş û rahîban bi siyanet hatine Pêxember pêşwazî kirine û îtîraf kirine ku ew pêxemberê çavlirê, yê dawiya demê ye.

وَاِذَا سَمِعُوا مَٓا اُنْزِلَ اِلَى الرَّسُولِ تَرٰٓى اَعْيُنَهُمْ تَفٖيضُ
مِنَ الدَّمْعِ مِمَّا عَرَفُوا مِنَ الْحَقِّۚ يَقُولُونَ رَبَّنَٓا اٰمَنَّا فَاكْتُبْنَا
مَعَ الشَّاهِدٖينَ ﴿٨٣﴾ وَمَا لَنَا لَا نُؤْمِنُ بِاللّٰهِ وَمَا جَٓاءَنَا
مِنَ الْحَقِّۙ وَنَطْمَعُ اَنْ يُدْخِلَنَا رَبُّنَا مَعَ الْقَوْمِ الصَّالِحٖينَ
﴿٨٤﴾ فَاَثَابَهُمُ اللّٰهُ بِمَا قَالُوا جَنَّاتٍ تَجْرٖي مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ
خَالِدٖينَ فٖيهَاۜ وَذٰلِكَ جَزَٓاءُ الْمُحْسِنٖينَ ﴿٨٥﴾ وَالَّذٖينَ كَفَرُوا
وَكَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَٓا اُولٰٓئِكَ اَصْحَابُ الْجَحٖيمِ ﴿٨٦﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذٖينَ
اٰمَنُوا لَا تُحَرِّمُوا طَيِّبَاتِ مَٓا اَحَلَّ اللّٰهُ لَكُمْ وَلَا تَعْتَدُواۜ
اِنَّ اللّٰهَ لَا يُحِبُّ الْمُعْتَدٖينَ ﴿٨٧﴾ وَكُلُوا مِمَّا رَزَقَكُمُ اللّٰهُ حَلَالًا
طَيِّبًاۖ وَاتَّقُوا اللّٰهَ الَّذٖٓي اَنْتُمْ بِهٖ مُؤْمِنُونَ ﴿٨٨﴾ لَا يُؤَاخِذُكُمُ
اللّٰهُ بِاللَّغْوِ فٖٓي اَيْمَانِكُمْ وَلٰكِنْ يُؤَاخِذُكُمْ بِمَا عَقَّدْتُمُ الْاَيْمَانَۚ
فَكَفَّارَتُهُٓ اِطْعَامُ عَشَرَةِ مَسَاكٖينَ مِنْ اَوْسَطِ مَا تُطْعِمُونَ
اَهْلٖيكُمْ اَوْ كِسْوَتُهُمْ اَوْ تَحْرٖيرُ رَقَبَةٍۜ فَمَنْ لَمْ يَجِدْ فَصِيَامُ
ثَلٰثَةِ اَيَّامٍۜ ذٰلِكَ كَفَّارَةُ اَيْمَانِكُمْ اِذَا حَلَفْتُمْۜ وَاحْفَظُٓوا
اَيْمَانَكُمْۜ كَذٰلِكَ يُبَيِّنُ اللّٰهُ لَكُمْ اٰيَاتِهٖ لَعَلَّكُمْ تَشْكُرُونَ ﴿٨٩﴾

**83**- Dema wan (keşîş û rahiban) ayetên ku bi bal Pêxember ve nazilbuyîn dibihîstin, ji ber ku wan zanîn ew ji cem Xwedê ye, tu dibîn ku çavên wan tije rondik dibûn. Digotin: Xwedayê me! Me bawerî anî, vêca me ji şahidan (ên li ser pêxemberiya Muhemmed) binivîse.

**84**- Ma çima em baweriyê bi Xwedê û bi heqiya ku ji me re hatiye neyînin? Digel ku em dixwazin ku Xwedayê me, me jî bixe nav mirovên qenc û çak.

**85**- Vêca bi sedema vê gotina wan, Xwedê ew bi bihiştên ku rûbar di bin wan re dikişin xelat kirin, ew heta bi hetayê dê lê bimînin. Ha ev e perûya (xelata) qencîkarên rast û durist.

**86**- Ewên ku kafir bûne û bi ayetên me bawerî neanîne, ha ew jî xelkê dojehê ne.

**87**- Gelî yên ku bawerî anîne! Ew tiştên xweş û pak, ew ên ku Xwedê ji bo we helal kirine, hûn (bi xwe) li xwe heram nekin û ji tixûbê (helaliyê) nebihurin. Bêguman Xwedê ji tixûbbihêran hez nake.

**88**- Ji rizqê xweş û helal ew ê ku Xwedê dayî we bixwin û vexwin. Ji (xezeba) wî Xwedayê ku we bawerî pê aniye, xwe biparêzin.

**89**- (Gelî bawermendan!) Xwedê Teala li ser sondên we yên bêhemdî, yên bêqesd li we nagire, lê belê ew sondên ku we bi hemdê xwe xwarin, li we digire. Vêca (eger we sond xwar û we sonda xwe şikand an jî we xwest bişikînin) cezayê (jêbirina gunehê) wê sondê, xwarindayina deh feqîran e, ji xwarina navincî ya ku rojane dide malbata xwe, yan bicilkirina wan e, yan jî azadkirina koleyekî ye. Ew kesê ku nikaribe yekê ji van bike, bila sê rojan rojî bigire. Ev e rakirina gunehê sondên we dema we sond xwar. Sondên xwe biparêzin (ne lezê li sondxwarinê bikin, ne jî lezê li sondşikandinê bikin û eger we sonda xwe şikand kefaretê wê bidin). Xwedê Teala ayetên xwe ji we re aşkera dike da ku hûn wî bişêkirînin.

Kesê ku -bi qesd- bi navê Xwedê sonda tiştekî bixwe, divê sonda xwe bîne cih. Heke sond xwaribe ku ew tiştekî heram yan jî xirab bike, hingê divê wî tiştê xirab neke, sonda xwe bişkîne û kefaretê wê bide. Kefaret, mirovî ji sondê vedigerîne û dibe navgîna lêborînê. Di ayetê de pêşî qala sê tiştan kir ku ew dibin cezayê (kefaretê) sondê. Ew kesê ku nikaribe yekî ji van her sê tiştan bike bila sê rojan rojî bigire.

يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُٓوا اِنَّمَا الْخَمْرُ وَالْمَيْسِرُ وَالْاَنْصَابُ وَالْاَزْلَامُ
رِجْسٌ مِنْ عَمَلِ الشَّيْطَانِ فَاجْتَنِبُوهُ لَعَلَّكُمْ تُفْلِحُونَ ٩٠ اِنَّمَا
يُر۪يدُ الشَّيْطَانُ اَنْ يُوقِعَ بَيْنَكُمُ الْعَدَاوَةَ وَالْبَغْضَٓاءَ فِي الْخَمْرِ
وَالْمَيْسِرِ وَيَصُدَّكُمْ عَنْ ذِكْرِ اللّٰهِ وَعَنِ الصَّلٰوةِ فَهَلْ اَنْتُمْ مُنْتَهُونَ
٩١ وَاَط۪يعُوا اللّٰهَ وَاَط۪يعُوا الرَّسُولَ وَاحْذَرُوا فَاِنْ تَوَلَّيْتُمْ
فَاعْلَمُٓوا اَنَّمَا عَلٰى رَسُولِنَا الْبَلَاغُ الْمُب۪ينُ ٩٢ لَيْسَ عَلَى الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا
وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ جُنَاحٌ ف۪يمَا طَعِمُٓوا اِذَا مَا اتَّقَوْا وَاٰمَنُوا وَعَمِلُوا
الصَّالِحَاتِ ثُمَّ اتَّقَوْا وَاٰمَنُوا ثُمَّ اتَّقَوْا وَاَحْسَنُوا وَاللّٰهُ يُحِبُّ
الْمُحْسِن۪ينَ ٩٣ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا لَيَبْلُوَنَّكُمُ اللّٰهُ بِشَيْءٍ مِنَ الصَّيْدِ
تَنَالُهُٓ اَيْد۪يكُمْ وَرِمَاحُكُمْ لِيَعْلَمَ اللّٰهُ مَنْ يَخَافُهُ بِالْغَيْبِ فَمَنِ اعْتَدٰى
بَعْدَ ذٰلِكَ فَلَهُ عَذَابٌ اَل۪يمٌ ٩٤ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا لَا تَقْتُلُوا الصَّيْدَ
وَاَنْتُمْ حُرُمٌ وَمَنْ قَتَلَهُ مِنْكُمْ مُتَعَمِّدًا فَجَزَٓاءٌ مِثْلُ مَا قَتَلَ مِنَ النَّعَمِ
يَحْكُمُ بِه۪ ذَوَا عَدْلٍ مِنْكُمْ هَدْيًا بَالِغَ الْكَعْبَةِ اَوْ كَفَّارَةٌ طَعَامُ
مَسَاك۪ينَ اَوْ عَدْلُ ذٰلِكَ صِيَامًا لِيَذُوقَ وَبَالَ اَمْرِه۪ عَفَا اللّٰهُ
عَمَّا سَلَفَ وَمَنْ عَادَ فَيَنْتَقِمُ اللّٰهُ مِنْهُ وَاللّٰهُ عَز۪يزٌ ذُو انْتِقَامٍ ٩٥

اُحِلَّ لَكُمْ

**90**- Gelî bawermendan! Bêguman mey (şerab), qumar, peykerên (pûtên) çikandî, falên bi zaran û (lîstikên) siûdê pîs in, ji karê şeytên in. Nexwe xwe ji wan dûr bigirin da ku hûn (li dinya û axretê) serfiraz bibin.

**91**- Bêguman tenê şeytan dixwaze di mey û qumarê de kîn û dijminahiyê bixe navbera we û we ji zikrê Xwedê û kirina nimêjê bide paş. Êdî ma hûn bes nakin?

**92**- Guhdariya Xwedê û pêxemberê wî bikin û xwe (ji gunehan) biparêzin. Eger hûn berê xwe (ji biryara Xwedê û pêxember) vegerînin, bizanin ku wezîfeya pêxemberê me, bes ragihandina (vê peymana) aşkeraker e.

**93**- Ji ber a ku berê kirin (ji vexwarina meyê û lîstina qumarê berî ku heram bibin), li ser ên ku bawerî anîn û karên qenc kirin tu guneh nîn e, bi egera ku ew (ji vê gavê û pê de) xwe (ji heramiyê) biparêzin, bawerî bînin û karê qenc bikin. Paşê dîsa xwe biparêzin û karê qenc bikin, paşî xwe biparêzin û qenciyê bikin. Xwedê teqez ji qencîkaran hez dike.

**94**- Gelî bawermendan! Sond be Xwedê (dema hûn di îhraman de bin) bi wê nêçîra ku hûn bi dest û rimên xwe dikin, we diceribîne, da Xwedê aşkera bike ka kî di nependiyê de jê ditirse. Piştî vê kî ji tixûbê (helaliyê) derbas bibe, ji wî re ezabekî dijwar heye.

**95**- Gelî bawermendan! Dema hûn di îhraman de bin (heywanên) nêçîrê nekujin. Kî ji we, bi qesd (heywana) nêçîrê bikuje, cezayê wî, dana heywaneke wekî ya kuştî ye. Du kesên biwijdan dê biryarê bidin (dê bibêjin; ev heywan hemkufî heywana kuştî ye). (Ev qurban) diyariyek e dê bigihîje Ke'bê (dê li Mekkê bê qurbankirin). Yan jî şûna qurbanê (bi qasî bihayê wê) xwarinê bide belengazan, an jî beramberî wê, rojiyê bigire da ku cezayê xwe ta'm bike. Xwedê ya berê hatî kirin efû kiriye. Kî ku careke din li vî sûcî vegere, Xwedê dê tolê lê veke. Xwedê desthilat e, tolveker e.

Mebest ji **"Tolveker"** ya li virê ew e ku kî neheqiyê li bindestan bike, ew dê ji wan re nemîne û Xwedê dê li wan dawê veke û heqê heqdaran ji neheqan bistîne û wan ceza bike.

أُحِلَّ لَكُمْ صَيْدُ الْبَحْرِ وَطَعَامُهُ مَتَاعًا لَكُمْ وَلِلسَّيَّارَةِۚ وَحُرِّمَ
عَلَيْكُمْ صَيْدُ الْبَرِّ مَا دُمْتُمْ حُرُمًاۜ وَاتَّقُوا اللّٰهَ الَّذٖٓى اِلَيْهِ
تُحْشَرُونَ ﴿٩٦﴾ جَعَلَ اللّٰهُ الْكَعْبَةَ الْبَيْتَ الْحَرَامَ قِيَامًا
لِلنَّاسِ وَالشَّهْرَ الْحَرَامَ وَالْهَدْىَ وَالْقَلَٓائِدَۜ ذٰلِكَ لِتَعْلَمُٓوا
اَنَّ اللّٰهَ يَعْلَمُ مَا فِى السَّمٰوَاتِ وَمَا فِى الْاَرْضِ وَاَنَّ اللّٰهَ بِكُلِّ
شَيْءٍ عَلٖيمٌ ﴿٩٧﴾ اِعْلَمُٓوا اَنَّ اللّٰهَ شَدٖيدُ الْعِقَابِ وَاَنَّ اللّٰهَ غَفُورٌ
رَحٖيمٌۜ ﴿٩٨﴾ مَا عَلَى الرَّسُولِ اِلَّا الْبَلَاغُۜ وَاللّٰهُ يَعْلَمُ
مَا تُبْدُونَ وَمَا تَكْتُمُونَ ﴿٩٩﴾ قُلْ لَا يَسْتَوِى الْخَبٖيثُ وَالطَّيِّبُ
وَلَوْ اَعْجَبَكَ كَثْرَةُ الْخَبٖيثِۚ فَاتَّقُوا اللّٰهَ يَٓا اُولِى الْاَلْبَابِ لَعَلَّكُمْ
تُفْلِحُونَ ﴿١٠٠﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذٖينَ اٰمَنُوا لَا تَسْـَٔلُوا عَنْ اَشْيَٓاءَ اِنْ تُبْدَ
لَكُمْ تَسُؤْكُمْۚ وَاِنْ تَسْـَٔلُوا عَنْهَا حٖينَ يُنَزَّلُ الْقُرْاٰنُ تُبْدَ لَكُمْۜ
عَفَا اللّٰهُ عَنْهَاۜ وَاللّٰهُ غَفُورٌ حَلٖيمٌ ﴿١٠١﴾ قَدْ سَاَلَهَا قَوْمٌ مِنْ
قَبْلِكُمْ ثُمَّ اَصْبَحُوا بِهَا كَافِرٖينَ ﴿١٠٢﴾ مَا جَعَلَ اللّٰهُ مِنْ بَحٖيرَةٍ
وَلَا سَٓائِبَةٍ وَلَا وَصٖيلَةٍ وَلَا حَامٍۙ وَلٰكِنَّ الَّذٖينَ كَفَرُوا
يَفْتَرُونَ عَلَى اللّٰهِ الْكَذِبَۜ وَاَكْثَرُهُمْ لَا يَعْقِلُونَ ﴿١٠٣﴾

**96**- (Gelî mirovan!) Nêçîra deryayê û xwarina wê ji bo we helal bû, da ji bo we û ji bo yê rêwingî bibe xwarin. Heta ku hûn di îhraman de bin ji bo we nêçîra bejahiyê jî hatiye heramkirin. Ji Xwedê bitirsin, ew Xwedayê ku hûn ê bi bal wî ve bên komkirin.

**97**- Xwedê Teala, ji mirovan re **Kebe**ya bi navê **Beytul-Heramê** (Mala birêz û birûmet) kiriye wargeha serûberkirina kar û barên dîn û dinyayê, mehên rûmetdar, qurbanên nîşankirî û yên nenîşankirî jî kirine egera berdewamiya ewlehî û jiyanê. Ev jî da hûn bizanin ku bêguman Xwedê ya li erd û asîmanan dizane û bêguman Xwedê bi her tiştî zana ye.

**Hecc**, îbadeteke wisa ye ku fêdeyên wê yên aborî, civatî û navneteweyî hene. Hem jî mirov bi hecê li xwe vedigere ku hîn ew li dinyayê ye jiyana mehşerê dijî. Di zihnê mirovî de hestê wekhevî û biratiyê xurt dike. Mehên hecê jî, mehên wisa ne ku di wan de ewleyî û aramî hakim e û şer qedexe ye. Ha ji ber ku di vê demê de di nêv wan hestên pak de, nêçîr û kuştina sewalan dijî halê wan ê derûnî ye, nêçîr hatiye heramkirin. Lêbelê nêçîra sewalên bejiyê qedexe ye, ne nêçîra yên deryayî.

**98**- (Gelî mirovan!) Bizanin ku bêguman ezabê Xwedê Teala pir dijwar e û bêşik Xwedê Teala gunehjêbir e dilovîn e.

**99**- Wezîfa Pêxember tenê ragihandina peyama Xwedê ye. Xwedê, bi ya ku hûn aşkera dikin û ya ku hûn vedişêrin dizane.

**100**- (Ya Muhemmed! Ji wan re) Bibêje: Pak û pîs ne wekhev in, çendî pirbûna ya nepak te **ecêbmayî** jî bihêle. Nexwe gelî aqildaran! (Ji xeşma) Xwedê Teala bitirsin da ku hûn (li dinya û axretê) serfiraz bibin.

**101**- Gelî bawermendan! Pirsa hin tiştan (ji pêxember) nekin, eger ew ji we re aşkera bibin, hûn ê pê nexweşhal bibin. Eger hûn di dema hatina Qur'anê de pirsa wan bikin, dê ji we re aşkera bibin. Xwedê Teala (ji pirsên berê) li we boriye. Xwedê Teala gunehjêbir e, berbihêr e.

**102**- Bêguman beriya we qewmekî ev pirs (ji pêxemberê xwe) kir, paşê (bi kar neanî) pê kafir bûn.

**103**- Xwedê Teala, “behîre”, “saîbe”, “wesîle” û “ham” durist nedêraye û ferman pê nedaye. Lê belê ew ên kafir bûne li ser (navê) Xwedê derewan dikin û piraniya wan jî tênegihiştî ne.

وَاِذَا ق۪يلَ لَهُمْ تَعَالَوْا اِلٰى مَٓا اَنْزَلَ اللّٰهُ وَاِلَى الرَّسُولِ قَالُوا حَسْبُنَا
مَا وَجَدْنَا عَلَيْهِ اٰبَٓاءَنَاۜ اَوَلَوْ كَانَ اٰبَٓاؤُ۬هُمْ لَا يَعْلَمُونَ شَيْـًٔا وَلَا
يَهْتَدُونَ ﴿١٠٤﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا عَلَيْكُمْ اَنْفُسَكُمْۚ لَا يَضُرُّكُمْ
مَنْ ضَلَّ اِذَا اهْتَدَيْتُمْۜ اِلَى اللّٰهِ مَرْجِعُكُمْ جَم۪يعًا فَيُنَبِّئُكُمْ
بِمَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿١٠٥﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا شَهَادَةُ بَيْنِكُمْ اِذَا حَضَرَ
اَحَدَكُمُ الْمَوْتُ ح۪ينَ الْوَصِيَّةِ اثْنَانِ ذَوَا عَدْلٍ مِنْكُمْ اَوْ اٰخَرَانِ
مِنْ غَيْرِكُمْ اِنْ اَنْتُمْ ضَرَبْتُمْ فِي الْاَرْضِ فَاَصَابَتْكُمْ مُص۪يبَةُ
الْمَوْتِۜ تَحْبِسُونَهُمَا مِنْ بَعْدِ الصَّلٰوةِ فَيُقْسِمَانِ بِاللّٰهِ اِنِ ارْتَبْتُمْ
لَا نَشْتَر۪ي بِه۪ ثَمَنًا وَلَوْ كَانَ ذَا قُرْبٰىۙ وَلَا نَكْتُمُ شَهَادَةَ
اللّٰهِ اِنَّٓا اِذًا لَمِنَ الْاٰثِم۪ينَ ﴿١٠٦﴾ فَاِنْ عُثِرَ عَلٰٓى اَنَّهُمَا اسْتَحَقَّٓا اِثْمًا
فَاٰخَرَانِ يَقُومَانِ مَقَامَهُمَا مِنَ الَّذ۪ينَ اسْتَحَقَّ عَلَيْهِمُ
الْاَوْلَيَانِ فَيُقْسِمَانِ بِاللّٰهِ لَشَهَادَتُنَٓا اَحَقُّ مِنْ شَهَادَتِهِمَا
وَمَا اعْتَدَيْنَٓا اِنَّٓا اِذًا لَمِنَ الظَّالِم۪ينَ ﴿١٠٧﴾ ذٰلِكَ اَدْنٰٓى اَنْ يَأْتُوا
بِالشَّهَادَةِ عَلٰى وَجْهِهَٓا اَوْ يَخَافُٓوا اَنْ تُرَدَّ اَيْمَانٌ بَعْدَ اَيْمَانِهِمْۜ
وَاتَّقُوا اللّٰهَ وَاسْمَعُواۜ وَاللّٰهُ لَا يَهْدِي الْقَوْمَ الْفَاسِق۪ينَ ﴿١٠٨﴾

يَوْمَ يَجْمَعُ

**104**- Dema ji wan re dihate gotin werin bal wehya (Qur'ana) ku Xwedê ew aniye xwarê û werin cem Pêxember (da hûn fêr bibin ka çi helal e û çi heram e). Dibêjin: Ev a (rêka) ku me bav û bapîrên xwe li ser dîtî besî me ye. Erê, ma eger bav û bapîrên wan bi tiştekî nizanibin û ne li ser rêka rast jî bin (besî wan e)?!

**105**- Gelî bawermendan! Hay ji xwe hebin, eger hûn di rêka rast de bin, kesê rêşaşbûyî nikare zerarê bide we. Vegera we tevan her bi bal Xwedê ve ye. Êdî Ew bi ya we kirî dê we agahdar bike.

**106**- Gelî bawermendan! Dema yek ji we kete ber mirinê, di dema wesiyetkirinê de bila ji we du kesên dadmend (yên misliman) di navbera xwe de wek şahid bigirin. Yan eger hûn rêwî bin û hûn ketin ber mirinê (û misliman bi dest we neketin), bila du kesên din; ne ji we, ji xwe re bigirin (bikin şahid), eger hûn bikevin gumanê (ku ew rast nebêjin), piştî nimêjê wan her du şahidan bînin, vêca bila bi Xwedê Teala sond bixwin ku (bibêjin): Em bi sonda derewîn tu pertalî nagirin, çendî ew li (menfîeta) lêziman be jî û em dê şahidiya xwe veneşêrin (eger em şahidiya xwe veşêrin) teqez em dibin ji gunehkaran.

**107**- (Paşê) Eger bête zanîn ku her du şahidan guneh kirine (şahidiya xwe durist nekirine), bila (ji mîratxweran) du kesên bêhtir nêzîkî mirî bikevin şûna wan, bila bi Xwedê Teala sond bixwin û bibêjin: Sond be ku şahidiya me ji ya wan rasttir e û em (bi sonda xwe) ji rastiyê dûr neketine. Eger me (ji bêbextî) şahdeyî li ser wan da hingê em dê bibin ji zaliman.

**108**- Ev şahdehiya bi vî rengî ji bo we çêtir e ku şahid mercê şahidiya xwe bînin cih û (çêtir e ku) ji sondeke piştî sonda xwe bitirsin ku ew a wan red bike (û hetîketiya wan derîne rastê). Hay ji (ferman û qedexeyên) Xwedê hebin û li fermanên wî guhdar bin. Xwedê Teala mirovê jirêderketî rasterê nake.

**Wesiyet**, mimkun e ku pêwendiya wê bi qenciyê, îbadet û şîretan re hebe û mimkun e ku di bara deynên xwe de be jî. Wesiyet, di bara deynên we de pêwîst e. Birastî, ji bo qewêtî winda nebe, Xwedê di ayetên jorîn de tedbîrên pêdivî eşkere kirine.

يَوْمَ يَجْمَعُ اللّٰهُ الرُّسُلَ فَيَقُولُ مَاذَٓا اُجِبْتُمْ قَالُوا لَا عِلْمَ لَنَا
اِنَّكَ اَنْتَ عَلَّامُ الْغُيُوبِ ﴿١٠٩﴾ اِذْ قَالَ اللّٰهُ يَا عِيسَى ابْنَ
مَرْيَمَ اذْكُرْ نِعْمَت۪ي عَلَيْكَ وَعَلٰى وَالِدَتِكَ اِذْ اَيَّدْتُكَ بِرُوحِ
الْقُدُسِ تُكَلِّمُ النَّاسَ فِي الْمَهْدِ وَكَهْلًا وَاِذْ عَلَّمْتُكَ
الْكِتَابَ وَالْحِكْمَةَ وَالتَّوْرٰيةَ وَالْاِنْج۪يلَ وَاِذْ تَخْلُقُ
مِنَ الطّ۪ينِ كَهَيْـَٔةِ الطَّيْرِ بِاِذْن۪ي فَتَنْفُخُ ف۪يهَا فَتَكُونُ طَيْرًا
بِاِذْن۪ي وَتُبْرِئُ الْاَكْمَهَ وَالْاَبْرَصَ بِاِذْن۪ي وَاِذْ تُخْرِجُ
الْمَوْتٰى بِاِذْن۪ي وَاِذْ كَفَفْتُ بَن۪ٓي اِسْرَٓائ۪يلَ عَنْكَ اِذْ جِئْتَهُمْ
بِالْبَيِّنَاتِ فَقَالَ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا مِنْهُمْ اِنْ هٰذَٓا اِلَّا سِحْرٌ
مُب۪ينٌ ﴿١١٠﴾ وَاِذْ اَوْحَيْتُ اِلَى الْحَوَارِيّ۪نَ اَنْ اٰمِنُوا ب۪ي
وَبِرَسُول۪ي قَالُٓوا اٰمَنَّا وَاشْهَدْ بِاَنَّنَا مُسْلِمُونَ ﴿١١١﴾ اِذْ قَالَ
الْحَوَارِيُّونَ يَا عِيسَى ابْنَ مَرْيَمَ هَلْ يَسْتَط۪يعُ رَبُّكَ اَنْ يُنَزِّلَ
عَلَيْنَا مَٓائِدَةً مِنَ السَّمَٓاءِ قَالَ اتَّقُوا اللّٰهَ اِنْ كُنْتُمْ مُؤْمِن۪ينَ
﴿١١٢﴾ قَالُوا نُر۪يدُ اَنْ نَأْكُلَ مِنْهَا وَتَطْمَئِنَّ قُلُوبُنَا وَنَعْلَمَ
اَنْ قَدْ صَدَقْتَنَا وَنَكُونَ عَلَيْهَا مِنَ الشَّاهِد۪ينَ ﴿١١٣﴾

**109**- (Gelî mirovan! Hişyar bin.) Roja Xwedê Teala pêxemberan kom dike, vêca ji wan re dibêje: Bersiva we (ji aliyê miletê we ve) çawa hate dayîn? Dibêjin: Em nizanin, bêguman her Tu yî zanayê bi nependiyan.

**110**- Wê demê Xwedê got: Ey Îsayê kurê Meryemê! Ew qencî û kerema ku min li te û dayîka te kiribû bîne bîra xwe; wê dema min bi Canê Pak (Cibraîl) piştgiriya tu kir ku te di dergûşê de digel mirovan peyivî û piştî tu mezin bûyî jî (te doza tewhîdê teblîx kir), (û) dema min tu fêrî nivîsîn û hîkmetê (têgihîştinê), Tewrat û Incîlê kir û dema te bi destûra min ji heriyê peykerê teyran çêdikir û te pif dikirê û bi destûra min dibû teyrek, (û) dema te bi destûra min korê ji zikmakî û nexweşê çermbelekî sax dikir û dema bi destûra min te mirî zindî dikirin, (û) dema me eziyeta îsraîliyan li ser te da paş, dema te delîlên (mûcîzeyên) aşkera ji wan re anîn êdî ew ên ku kafir bûbûn, gotin "Ev ji sêrbaziyeke aşkera pê ve ne tiştekî din e."

Di vê ayetê û yên pey wê de, ew tiştên adetqetên û awarte tev mucîze ne. Mûcîze ew e ku li gorî qanûnên tebi'î mirov nikare wan bîne û ew zêdeyî hêza însên in. Lêbelê Xwedê hin rewşên adetqetên û naçerehêl dane pêxemberan da ku bi xêra wan mirov îmanê bînin û bêne ser rêya rast. Ev mu'cize tenê bi destûr û qudreta Xwedê têne holê.

**111**- Di bîra wan bîne, wê dema me sirûş (îlham) dabû **Hewariyan** (Me îlham xiste dilê arîkarên Îsa) ku baweriyê bi min û Pêxemberê min bînin, gotin: Me bawerî anî, Tu şahid be ku bêguman em misliman in.

**Hewarî**, hevalên Nebî Îsa yên dînpak û dilsade ne ku di jiyana wî de pê bawerî anîne û bûne peyrewên wî.

**112**- Di bîra wan bîne, wê dema hewariyan (arîkarên Îsa) got: Ey Îsayê kurê Meryemê! Ma Xwedayê te dikare sifreyeke hazir ji esmên ji me re daxe xwarê? (Îsa jî ji wan re) got: Ji Xwedê bitirsin eger bi rastî hûn bawermend in.

**113**- (Hewariyan) Gotin: Em dixwazin ji wê (sifreyê) bixwin û dilê me jî ewle bibe û bila em bizanin ku te ji me re rast gotiye û da ku em li ser (hatina) wê bibin şahid.

قَالَ عِيسَى ابْنُ مَرْيَمَ اللّٰهُمَّ رَبَّنَا اَنْزِلْ عَلَيْنَا مَائِدَةً مِنَ السَّمَاءِ
تَكُونُ لَنَا عِيدًا لِاَوَّلِنَا وَاٰخِرِنَا وَاٰيَةً مِنْكَ وَارْزُقْنَا وَاَنْتَ خَيْرُ
الرَّازِقِينَ ﴿١١٤﴾ قَالَ اللّٰهُ اِنِّي مُنَزِّلُهَا عَلَيْكُمْ فَمَنْ يَكْفُرْ بَعْدُ مِنْكُمْ
فَاِنِّي اُعَذِّبُهُ عَذَابًا لَا اُعَذِّبُهُ اَحَدًا مِنَ الْعَالَمِينَ ﴿١١٥﴾ وَاِذْ قَالَ اللّٰهُ
يَا عِيسَى ابْنَ مَرْيَمَ ءَاَنْتَ قُلْتَ لِلنَّاسِ اتَّخِذُونِي وَاُمِّيَ اِلٰهَيْنِ
مِنْ دُونِ اللّٰهِ قَالَ سُبْحَانَكَ مَا يَكُونُ لِي اَنْ اَقُولَ مَا لَيْسَ لِي
بِحَقٍّ اِنْ كُنْتُ قُلْتُهُ فَقَدْ عَلِمْتَهُ تَعْلَمُ مَا فِي نَفْسِي وَلَا اَعْلَمُ مَا
فِي نَفْسِكَ اِنَّكَ اَنْتَ عَلَّامُ الْغُيُوبِ ﴿١١٦﴾ مَا قُلْتُ لَهُمْ اِلَّا مَا اَمَرْتَنِي
بِهِ اَنِ اعْبُدُوا اللّٰهَ رَبِّي وَرَبَّكُمْ وَكُنْتُ عَلَيْهِمْ شَهِيدًا مَا دُمْتُ
فِيهِمْ فَلَمَّا تَوَفَّيْتَنِي كُنْتَ اَنْتَ الرَّقِيبَ عَلَيْهِمْ وَاَنْتَ عَلٰى كُلِّ
شَيْءٍ شَهِيدٌ ﴿١١٧﴾ اِنْ تُعَذِّبْهُمْ فَاِنَّهُمْ عِبَادُكَ وَاِنْ تَغْفِرْ لَهُمْ فَاِنَّكَ
اَنْتَ الْعَزِيزُ الْحَكِيمُ ﴿١١٨﴾ قَالَ اللّٰهُ هٰذَا يَوْمُ يَنْفَعُ الصَّادِقِينَ
صِدْقُهُمْ لَهُمْ جَنَّاتٌ تَجْرِي مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ خَالِدِينَ فِيهَا اَبَدًا
رَضِيَ اللّٰهُ عَنْهُمْ وَرَضُوا عَنْهُ ذٰلِكَ الْفَوْزُ الْعَظِيمُ ﴿١١٩﴾ لِلّٰهِ مُلْكُ
السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَمَا فِيهِنَّ وَهُوَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ ﴿١٢٠﴾

سُورَةُ

**114**- Îsayê kurê Meryemê got: Xwedayê min! Ji me re ji esmên sifreyekê daxe xwarê da ku ji bo me û yên berî me û piştî me re bibe cejn (îd) û bila bibe nîşanek (mûcîzeyek) ji te û (vê xwarinê) bike rizqê me, Tu her çêtirîn rizqdar î.

**115**- Xwedê Teala got: Bêguman ez ê ji bo we (xwarinê) bînim xwarê. Vêca kî ji we piştî vê kafir bibe, ez ê ezabekî wisa bidimê ku li dinyayê tu kesê din pê nedim ezabê.

**116**- Di bîra wan bîne dema Xwedê Teala got: Ey Îsayê kurê Meryemê! Ma te ji mirovan re got ku min û dayîka min ji bilî Ellah Teala, du îlah (mabûd) wergirin. (Îsayê kurê Meryemê) got: Haşa! Ez te ji hemû kêmasiyan pak didêrim, ya ji min re ne durist be, ne heqê min e ku ez bibêjim. Eger min ew gotibe, bêguman Tu pê dizanî. Tu ya di dilê min de dizanî û ez ji nihêniyên te tu tiştî nizanim. Bêguman her tu yî zanayê bi ya nediyar û nihênî.

**117**- Tenê tiştê ku Te pê emrê min kirî, min ew ji wan re got: Ku tenê Xwedê Teala bihebînin, ew Xwedayê min û Xwedayê we ye û ez li ser wan zêrevan bûm heta ku ez di nava wan de bûm. Vêca çi dema te ez ji nav wan rakirim, êdî tenê her Tu yî li ser wan çavdêr û her Tu yî li ser her tiştî bîner.

**118**- Eger Tu ezab bidî wan, jixwe ew evdên te ne. (Tu çi bivê tu dê bi wan bikî). Eger tu li (gunehên) wan biborî, vêca birastî her tu yî yê 'ezîz, yê hekîm.

**119**- Xwedê wiha got: Ev, ew roj e ku tê de rastiya rastgoyan dê feydê bide wan. Ji wan re bihiştên wisa hene ku di binê wan re çem (û robar) diherikin. Her û her, heta bi hetayê ew ê lê bimînin. Xwedê ji wan razî bûye, ew jî ji Xwedê razî bûne. Ha ev e, serkeftina mezin.

**120**- Milk û desthilatiya erd û asîmanan û çi tiştên ku di navbera wan de hene her yên Xwedê Teala ne. Ew li ser her tiştî qadir e.

## SÛREYÊ EN'AM

Sûreyê En'am 165 (sed û şêst û pênc) ayet e. Ji 6 ayetan pê ve li Mekkê daketiye. Ev sûre, ji ber ku hin ayetên wî, adetên ereban ên ku li hemberî terş (deve, dewar û pez) tetbîq dikirin, rexne û şermezar dike, jê re Sûreyê En'am hatiye gotin ku ew bi maneya "terş" e. **Sûreyê En'am**, di heqê "**Eqîde û bingehên îmanê**"de ye. Mirov dikare vê meseleyê jî di sê mijaran de kurt û xulase bike: Uluhiyet, wehî (peyxam), saxkirina piştî mirinê û xelat û celat e. Sûret, bi piranî li ser rêz û rêçên bingehîn ên doza Îslamê radiweste.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

1- Pesn û spasî her ji bo Xwedê ye, Ew Xwedayê ku erd û asîman afirandin, tarîtî û ronahî jî çêkirin. Piştî vê tevekê, ew ên kafir bûne ji Xwedayê xwe re hevtayan çêdikin (û berê xwe jê dizivirînin).

2- Ew Xwedayê ku hûn ji heriyê afirandin, paşê ji we re civanek danî (ku hûn ê di dawiya wî civanî de bimirin) û li cem wî (bo vejîna piştî mirinê) civanekî binavkirî heye. Piştî vê, hûn der barê vejînê de gumandar in?!

3- Her Xwedê ye yê ku li erd û esmanan babetê Xwedatiyê ye, nehênî û aşkerahiyên we dizane û tiştên ku hûn bi dest dixin jî dizane.

4- Her çiqas ayetek ji ayetên Xwedayê wan, ji wan re hatibe, her wan berê xwe jê vegerandiye.

5- Vêca dema Qur'an ji wan re hat, wan bawerî pê neanî. Lê paşê xebera cezayê ya ku pê tinaz kirin, dê ji wan re bê.


١٢٩ اَلْجُزْءُ السَّابِعُ

سُورَةُ الْاَنْعَامِ مَكِّيَّةٌ وَهِيَ مِائَةٌ وَخَمْسٌ وَسِتُّونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ

اَلْحَمْدُ لِلّٰهِ الَّذ۪ي خَلَقَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ وَجَعَلَ الظُّلُمَاتِ
وَالنُّورَ ثُمَّ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا بِرَبِّهِمْ يَعْدِلُونَ ١ هُوَ الَّذ۪ي خَلَقَكُمْ مِنْ ط۪ينٍ
ثُمَّ قَضٰٓى اَجَلًا وَاَجَلٌ مُسَمًّى عِنْدَهُ ثُمَّ اَنْتُمْ تَمْتَرُونَ ٢ وَهُوَ اللّٰهُ
فِي السَّمٰوَاتِ وَفِي الْاَرْضِ يَعْلَمُ سِرَّكُمْ وَجَهْرَكُمْ وَيَعْلَمُ مَا تَكْسِبُونَ
٣ وَمَا تَأْت۪يهِمْ مِنْ اٰيَةٍ مِنْ اٰيَاتِ رَبِّهِمْ اِلَّا كَانُوا عَنْهَا مُعْرِض۪ينَ ٤ فَقَدْ
كَذَّبُوا بِالْحَقِّ لَمَّا جَٓاءَهُمْ فَسَوْفَ يَأْت۪يهِمْ اَنْبٰٓؤُا مَا كَانُوا بِه۪ يَسْتَهْزِؤُنَ
٥ اَلَمْ يَرَوْا كَمْ اَهْلَكْنَا مِنْ قَبْلِهِمْ مِنْ قَرْنٍ مَكَّنَّاهُمْ فِي الْاَرْضِ
مَا لَمْ نُمَكِّنْ لَكُمْ وَاَرْسَلْنَا السَّمَٓاءَ عَلَيْهِمْ مِدْرَاراً وَجَعَلْنَا الْاَنْهَارَ
تَجْر۪ي مِنْ تَحْتِهِمْ فَاَهْلَكْنَاهُمْ بِذُنُوبِهِمْ وَاَنْشَأْنَا مِنْ بَعْدِهِمْ قَرْناً
اٰخَر۪ينَ ٦ وَلَوْ نَزَّلْنَا عَلَيْكَ كِتَاباً ف۪ي قِرْطَاسٍ فَلَمَسُوهُ بِاَيْد۪يهِمْ
لَقَالَ الَّذ۪ينَ كَفَرُٓوا اِنْ هٰذَٓا اِلَّا سِحْرٌ مُب۪ينٌ ٧ وَقَالُوا لَوْلَٓا
اُنْزِلَ عَلَيْهِ مَلَكٌ وَلَوْ اَنْزَلْنَا مَلَكاً لَقُضِيَ الْاَمْرُ ثُمَّ لَا يُنْظَرُونَ ٨

**6**- Ma ew nanêrin ka me beriya wan çend nifş mirov helak kirine? Me ew hêz û derfeta ku li erdê daye wan, nedaye we. Me (ji ewran) baran li ser wan barand, me çem di bin wan re herikandin. Vêca ji ber gunehên wan me ew helak kirin û piştî wan me nifşinên din afirandin.

**7**- (Resûlê min!) Eger me kitêbek li kaxizê nivîsandî ji te re bianiya, vêca wan bi destên xwe rahiştayê, dê ew ên kafir bûne bigotina"Ev, bes sêhrebendiyeke aşkera ye."

**8**- Dîsa gotin: De bila melayîketek digel Muhemmed bihata (ku jê re bibe arîkar û me jî ew bidîtaya). Eger me melek aşkera bihinarta (vêca wan bawerî pê neaniya) dê fermana me bi helaka wan misoger bibûya, paşî ew nedihate paşdexistin jî.

وَلَوْ جَعَلْنَاهُ مَلَكًا لَجَعَلْنَاهُ رَجُلًا وَلَلَبَسْنَا عَلَيْهِمْ
مَا يَلْبِسُونَ ﴿٩﴾ وَلَقَدِ اسْتُهْزِئَ بِرُسُلٍ مِنْ قَبْلِكَ فَحَاقَ
بِالَّذِينَ سَخِرُوا مِنْهُمْ مَا كَانُوا بِهِ يَسْتَهْزِؤُنَ ﴿١٠﴾ قُلْ
سِيرُوا فِي الْاَرْضِ ثُمَّ انْظُرُوا كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ الْمُكَذِّبِينَ
﴿١١﴾ قُلْ لِمَنْ مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ قُلْ لِلّٰهِ كَتَبَ عَلٰى
نَفْسِهِ الرَّحْمَةَ لَيَجْمَعَنَّكُمْ اِلٰى يَوْمِ الْقِيٰمَةِ لَا رَيْبَ فِيهِ
اَلَّذِينَ خَسِرُوا اَنْفُسَهُمْ فَهُمْ لَا يُؤْمِنُونَ ﴿١٢﴾ وَلَهُ مَا سَكَنَ
فِي الَّيْلِ وَالنَّهَارِ وَهُوَ السَّمِيعُ الْعَلِيمُ ﴿١٣﴾ قُلْ اَغَيْرَ اللّٰهِ
اَتَّخِذُ وَلِيًّا فَاطِرِ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَهُوَ يُطْعِمُ وَلَا
يُطْعَمُ قُلْ اِنِّي اُمِرْتُ اَنْ اَكُونَ اَوَّلَ مَنْ اَسْلَمَ وَلَا تَكُونَنَّ
مِنَ الْمُشْرِكِينَ ﴿١٤﴾ قُلْ اِنِّي اَخَافُ اِنْ عَصَيْتُ رَبِّي عَذَابَ
يَوْمٍ عَظِيمٍ ﴿١٥﴾ مَنْ يُصْرَفْ عَنْهُ يَوْمَئِذٍ فَقَدْ رَحِمَهُ وَذٰلِكَ
الْفَوْزُ الْمُبِينُ ﴿١٦﴾ وَاِنْ يَمْسَسْكَ اللّٰهُ بِضُرٍّ فَلَا كَاشِفَ
لَهُ اِلَّا هُوَ وَاِنْ يَمْسَسْكَ بِخَيْرٍ فَهُوَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ
﴿١٧﴾ وَهُوَ الْقَاهِرُ فَوْقَ عِبَادِهِ وَهُوَ الْحَكِيمُ الْخَبِيرُ ﴿١٨﴾

قُلْ اَيُّ

**9**- Eger me pêxember ji melayîketan bihinarta, me dê ew di sûreê zilamekî de bişanda û dîsa me dê ew muşrik bixistina wê gumana ku ew vê demê tê de ne.

**10**- (Resûlê min!) Bêguman bi pêxemberên beriya te jî tinaz hatibû kirin.Vêca ew ezabê ku wan pê tinaz dikir û bawerî pê nedianî, ji wan re hat û ew helak kirin.

**11**- Bibêje: De li ser rûyê erdê bigerin, paşê binêrin ka dûmahîka bêbaweran bû çi?

**12**- Ji wan bipirse: Çiqas tiştên ku li erd û asîmanan hene yên kê ne? Bibêje: Ew ên Xwedê ne. Wî li ser zatê xwe dilovanî misoger kiriye (vêca li cezadanê lez meke). Bêguman roja qiyametê ya ku tê de guman nîn e, dê we li hev bicivîne. Ew ên ku (bi kirina gunehan) xwe xeşirandine, vêca ew bawerî nayînin (û bi yekîtiya Xwedê biryar nadin).

**13**- Çi tiştê ku di şev û rojê de diqewime her ê Xwedê ye. Ew e yê bihîzer, ê zana.

**14**- Bibêje: Ma ez ê ji bilî Xwedê, ji bo xwe dost û arîkarekî bigirim. Digel ku Xwedê afirînerê erd û esmanan e û ku ew rizq dide û nayê risiqdan (Helbet na!) Bibêje: Bêguman ferman li min hatiye kirin ku ez bibim ji mislimanên pêşî û (ji min re hatiye gotin:) zinhar (!) tu nebe ji wan ên ku ji bo Xwedê hevpişkan çêdikin.

**15**- Bibêje: Bêguman ez ji ezabê rojeke mezin ditirsim ku ez bêemriya Xwedayê xwe bikim (ku ew ro roja qiyametê ye).

**16**- Ew kesê ku wê rojê azar ji serê bê dagerandin, vêca bêguman Xwedê dilovanî lê kiriye û ew e xelasiya aşkera.

**17**- Eger Xwedê Teala zerarê bide te vêca ji wî pê ve tu kes nikare ji ser te bide alî û eger ew qenciyekê li te bike vêca Ew li ser her tiştî qadir e.

**18**- Ew e yê li ser evdên xwe desthilatdar, Ew e yê hekîm, Ew e yê agahdar.

Li gorî hatiye ragihandin, mezinê Mekkê hatin bal Pêxemberê Xwedê û jê re gotin: Ya Muhemmed! Em tu kesî nabînin ku der heqê pêxemberiya te de, te rast bidêre. Me pirsa te ji cihû û filehan kir, gotin: Li bal me tu behs û salixa wî tune ye. Naxwe de ka tu yekî şanî me bide ku wekî tu dibêjî; ew bibe şahid ku tu pêxemberê Xwedê yî ? Êdî Xwedê ev ayet nazil kir.

قُلْ اَيُّ شَيْءٍ اَكْبَرُ شَهَادَةً قُلِ اللّٰهُ شَهِيدٌ بَيْنِي وَبَيْنَكُمْ وَاُوحِيَ اِلَيَّ
هٰذَا الْقُرْاٰنُ لِاُنْذِرَكُمْ بِهٖ وَمَنْ بَلَغَ اَئِنَّكُمْ لَتَشْهَدُونَ اَنَّ مَعَ
اللّٰهِ اٰلِهَةً اُخْرٰى قُلْ لَٓا اَشْهَدُ قُلْ اِنَّمَا هُوَ اِلٰهٌ وَاحِدٌ وَاِنَّنِي بَرٓيءٌ مِمَّا
تُشْرِكُونَ ﴿١٩﴾ اَلَّذِينَ اٰتَيْنَاهُمُ الْكِتَابَ يَعْرِفُونَهُ كَمَا يَعْرِفُونَ اَبْنَٓاءَهُمْ
اَلَّذِينَ خَسِرُٓوا اَنْفُسَهُمْ فَهُمْ لَا يُؤْمِنُونَ ﴿٢٠﴾ وَمَنْ اَظْلَمُ مِمَّنِ افْتَرٰى
عَلَى اللّٰهِ كَذِبًا اَوْ كَذَّبَ بِاٰيَاتِهٖ اِنَّهُ لَا يُفْلِحُ الظَّالِمُونَ ﴿٢١﴾ وَيَوْمَ
نَحْشُرُهُمْ جَمِيعًا ثُمَّ نَقُولُ لِلَّذِينَ اَشْرَكُٓوا اَيْنَ شُرَكَٓاؤُكُمُ الَّذِينَ
كُنْتُمْ تَزْعُمُونَ ﴿٢٢﴾ ثُمَّ لَمْ تَكُنْ فِتْنَتُهُمْ اِلَّٓا اَنْ قَالُوا وَاللّٰهِ رَبِّنَا مَا كُنَّا
مُشْرِكِينَ ﴿٢٣﴾ اُنْظُرْ كَيْفَ كَذَبُوا عَلٰٓى اَنْفُسِهِمْ وَضَلَّ عَنْهُمْ مَا كَانُوا
يَفْتَرُونَ ﴿٢٤﴾ وَمِنْهُمْ مَنْ يَسْتَمِعُ اِلَيْكَ وَجَعَلْنَا عَلٰى قُلُوبِهِمْ اَكِنَّةً
اَنْ يَفْقَهُوهُ وَفٖٓي اٰذَانِهِمْ وَقْرًا وَاِنْ يَرَوْا كُلَّ اٰيَةٍ لَا يُؤْمِنُوا بِهَا حَتّٰٓى
اِذَا جَٓاؤُكَ يُجَادِلُونَكَ يَقُولُ الَّذِينَ كَفَرُٓوا اِنْ هٰذَٓا اِلَّٓا اَسَاطِيرُ
الْاَوَّلِينَ ﴿٢٥﴾ وَهُمْ يَنْهَوْنَ عَنْهُ وَيَنْـَٔوْنَ عَنْهُ وَاِنْ يُهْلِكُونَ اِلَّٓا
اَنْفُسَهُمْ وَمَا يَشْعُرُونَ ﴿٢٦﴾ وَلَوْ تَرٰٓى اِذْ وُقِفُوا عَلَى النَّارِ فَقَالُوا
يَا لَيْتَنَا نُرَدُّ وَلَا نُكَذِّبَ بِاٰيَاتِ رَبِّنَا وَنَكُونَ مِنَ الْمُؤْمِنِينَ ﴿٢٧﴾

**19**- Bibêje: Ma şehdeyiya kê herî mezin e? Bibêje: Xwedê Teala bi şahidî herî mezin e, ew di navbera min û we de şahid e û ev Qur’ana hanê ji min re hatiye wehîkirin da ku ez we û kesê ku deng bigihîjê ji azara Xwedê bitirsînim. Bibêje: Ma ji dil hûn şahdeyiyê didin ku digel Ellah Teala xwedayên din hene? Bibêje: Ez li ser vî çendî nabim şahid. Bibêje: Ew bes Xwedayekî bi tenê ye û bêguman ez ji hevpişkiya ku hûn ji bo wî çêdikin, bêrî me.

**20**- Ew ên ku me kitêb daye wan, wekî ku ew kurên xwe nas dikin, eynî wisa jî (Muhemmed bi pêxemberî) nas dikin. Ewên ku li nefsa xwe xisaret kirin, vêca ew baweriyê nayînin.

**21**- Ma ji wî kesî kî sitemkartir e ku li ser (navê) Xwedê Teala derewan bike, yan jî bi ayetên wî bawerî neyîne?! Bêguman rewş ew e, sitemkar bi ser nakevin.

**22**- (Resûlê min! Bîne bîra wan) Wê roja ku em hemûyan li hev kom bikin, paşê em ê ji yên ku (ji Xwedê re) hevpişk çêkirin re bibêjin: Ma kanê pûtên we, ew ên ku we digot, ew Xweda ne?

**23**- Piştî vê, tu çare û bersiva wan nemaye ji bilî ku bibêjin: Em bi Xwedê Teala, Perwerdegarê xwe sond dixwin ku em ne hevparçêker (muşrik) bûn’!

**24**- De li wan binêre. Çawa derewan li xwe dikin û çawa ew pûtên ku bi neweyî ji Xwedê Teala re dikirin hemkûf, ji ber wan winda dibin.

**25**- (Resûlê min!) Hin ji wan (dema tu Qur’anê dixwînî) li te guhdarî dikin, me li ser dilê wan perde û di guhên wan de jî giranî danî da ku ew tênegihîjin. Çendî ew tevekê mucîzeyan bibînin jî dîsa ew ê bawer nekin. Çi dema têne cem te, bi te re nîqaşê dikin û dibêjin: “Ev Qur’an ji çîrokên pêşiyan pê ve ne tiştekî din e.”

**26**- Ew, mirovan jê (ji hevalbendiya heqiyê û ji rastdêrîniya pêxemberiya pêxember û ji peyrewiya Qur’anê) vedikişînin û ew bi xwe jî jê dûr diçin. Ew her tenê nefsa xwe dibin helakê û pê jî nahisin.

**27**- (Resûlê min!) xwezî te rewşa wan bidîta, dema li ber agir têne rawestandin û dibêjin: Ax, xwezîka em li dinyayê bihatina vegerandin û me bi ayetên Xwedayê xwe bawerî bianiya û em bibûna ji yên bawermend.

بَلْ بَدَا لَهُمْ مَا كَانُوا يُخْفُونَ مِنْ قَبْلُ وَلَوْ رُدُّوا لَعَادُوا لِمَا نُهُوا
عَنْهُ وَاِنَّهُمْ لَكَاذِبُونَ ﴿٢٨﴾ وَقَالُوا اِنْ هِيَ اِلَّا حَيَاتُنَا الدُّنْيَا
وَمَا نَحْنُ بِمَبْعُوثِينَ ﴿٢٩﴾ وَلَوْ تَرٰى اِذْ وُقِفُوا عَلٰى رَبِّهِمْ قَالَ
اَلَيْسَ هٰذَا بِالْحَقِّ قَالُوا بَلٰى وَرَبِّنَا قَالَ فَذُوقُوا الْعَذَابَ بِمَا كُنْتُمْ
تَكْفُرُونَ ﴿٣٠﴾ قَدْ خَسِرَ الَّذِينَ كَذَّبُوا بِلِقَاءِ اللّٰهِ حَتّٰى اِذَا جَاءَتْهُمُ
السَّاعَةُ بَغْتَةً قَالُوا يَا حَسْرَتَنَا عَلٰى مَا فَرَّطْنَا فِيهَا وَهُمْ يَحْمِلُونَ
اَوْزَارَهُمْ عَلٰى ظُهُورِهِمْ اَلَا سَاءَ مَا يَزِرُونَ ﴿٣١﴾ وَمَا الْحَيٰوةُ
الدُّنْيَا اِلَّا لَعِبٌ وَلَهْوٌ وَلَلدَّارُ الْاٰخِرَةُ خَيْرٌ لِلَّذِينَ يَتَّقُونَ اَفَلَا
تَعْقِلُونَ ﴿٣٢﴾ قَدْ نَعْلَمُ اِنَّهُ لَيَحْزُنُكَ الَّذِي يَقُولُونَ فَاِنَّهُمْ
لَا يُكَذِّبُونَكَ وَلٰكِنَّ الظَّالِمِينَ بِاٰيَاتِ اللّٰهِ يَجْحَدُونَ ﴿٣٣﴾ وَلَقَدْ
كُذِّبَتْ رُسُلٌ مِنْ قَبْلِكَ فَصَبَرُوا عَلٰى مَا كُذِّبُوا وَاُوذُوا حَتّٰى
اَتٰيهُمْ نَصْرُنَا وَلَا مُبَدِّلَ لِكَلِمَاتِ اللّٰهِ وَلَقَدْ جَاءَكَ مِنْ نَبَاِ
الْمُرْسَلِينَ ﴿٣٤﴾ وَاِنْ كَانَ كَبُرَ عَلَيْكَ اِعْرَاضُهُمْ فَاِنِ اسْتَطَعْتَ
اَنْ تَبْتَغِيَ نَفَقًا فِي الْاَرْضِ اَوْ سُلَّمًا فِي السَّمَاءِ فَتَأْتِيَهُمْ بِاٰيَةٍ
وَلَوْ شَاءَ اللّٰهُ لَجَمَعَهُمْ عَلَى الْهُدٰى فَلَا تَكُونَنَّ مِنَ الْجَاهِلِينَ ﴿٣٥﴾

اِنَّمَا

**28**- (Nexêr, ne wisan e) belkî ji wan re ya ku wan berê vedişart xuya bû, eger ew dîsa li dinyayê bên vegerandin, ew ê li ya ku ji wan re hatibû qedexekirin, dîsa vegeriyana. Bêguman ew her derewîn in.

**29**- Gotin: Jiyan bes jiyana me ya vê dinyayê ye û em ê piştî mirinê neyên vejandin.

**30**- (Resûlê min!) xwezî te ew bidîtina! Dema ew li ber Xwedayê xwe tên rawestandin. (Xwedê) dibêje: Qey ev (vejîna we) ne rast û heq e? Dibêjin: Belê em bi Xwedayê xwe sond dixwin ku rast e. Xwedê dibêje: De vêca ji ber kufra xwe ezab tehm bikin!

**31**- Bêguman ew ên ku bi çûyîna ber destê Xwedê bawerî neanîn, wan ziyan kir. Heya ku ji nişka ve qiyamet li wan rabe, ew ê gunehên xwe deynin ser pişta xwe û dê bibêjin: Hey wax li me, li ser vê texsîriyê ku me di îbadetê de sistayî kir. Hey hêê! Ew barê ku ew hildigirin çi pîs bar e!

**32**- Jiyana vê dinyayê bes lîstik û mijûlbûn e û ji bo wan ên ku (ji gunehan) xwe diparêzin jî, bêguman mala axretê çêtir e. Erê, ma hê jî hûn aqil nagirin?

Rojekê Ebû Cehil ji Pêxemberê Merhemetê re got: “Em ji te re nabêjin, tu derewan dikî, lewra em tev dizanin ku tu mirovekî rastgo û pêbawer î, lê em ayetên Xwedê înkar dikin.” Pêxemberê Alîcenab ji ber vê rewşê pir xemgîn bû. Vêca Xwedê bi mebesta ku hedana qasidê xwe bîne, bi vê ayetê ev rewş destnîşan kir.

**33**- (Resûlê min!) Bêguman em dizanin ku gotina wan te xemgîn dike. Vêca bi rastî ne ku ew bi te bawerî nayînin; lê belê yên sitemkar ayetên Xwedê mandel dikin.

**34**- Bêguman gelek pêxemberên beriya te jî bawerî bi wan nehatiye anîn, vêca li hember vê nebaweriyê û tehdedîtinê xwe ragirtin û sebir kêşan, heta ku arîkariya me ji wan re hat. Tu guherîn ji bo fermanên Xwedê Teala nîn e (ku arîkariya Xwedê ji bo bawermendan dê her bê). Bêguman serpêhatiyên pêxemberan ji te re hatin.

**35**- Eger danapaşa wan (ji vî dînî û neguhdariya wan li te) li ser te giran tê, vêca eger tu dikarî di têbihurekê (nefeqekê) de xwe berdî erdê yan jî bi sêlmekê ber bi asîmanan ve hilkişî, vêca tu ji wan re jî nîşanan (ji erd û esmanan) bînî (da ku bi te bawerî bînin, de bike! Belê tu nikarî bikî, nexwe heta ku fermana Xwedê bê, sebir bike). Eger Xwedê bivaya dê ew li ser hîdayetê bicivandina, vêca tu nebe ji nezanan.

إِنَّمَا يَسْتَجِيبُ الَّذِينَ يَسْمَعُونَ وَالْمَوْتٰى يَبْعَثُهُمُ اللّٰهُ ثُمَّ إِلَيْهِ
يُرْجَعُونَ ﴿٣٦﴾ وَقَالُوا لَوْلَا نُزِّلَ عَلَيْهِ اٰيَةٌ مِنْ رَبِّهِ قُلْ إِنَّ اللّٰهَ
قَادِرٌ عَلٰى أَنْ يُنَزِّلَ اٰيَةً وَلٰكِنَّ أَكْثَرَهُمْ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٣٧﴾ وَمَا مِنْ
دَابَّةٍ فِي الْأَرْضِ وَلَا طَائِرٍ يَطِيرُ بِجَنَاحَيْهِ إِلَّا أُمَمٌ أَمْثَالُكُمْ
مَا فَرَّطْنَا فِي الْكِتَابِ مِنْ شَيْءٍ ثُمَّ إِلٰى رَبِّهِمْ يُحْشَرُونَ ﴿٣٨﴾
وَالَّذِينَ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا صُمٌّ وَبُكْمٌ فِي الظُّلُمَاتِ مَنْ يَشَأِ اللّٰهُ
يُضْلِلْهُ وَمَنْ يَشَأْ يَجْعَلْهُ عَلٰى صِرَاطٍ مُسْتَقِيمٍ ﴿٣٩﴾ قُلْ أَرَأَيْتَكُمْ
إِنْ أَتٰيكُمْ عَذَابُ اللّٰهِ أَوْ أَتَتْكُمُ السَّاعَةُ أَغَيْرَ اللّٰهِ تَدْعُونَ
إِنْ كُنْتُمْ صَادِقِينَ ﴿٤٠﴾ بَلْ إِيَّاهُ تَدْعُونَ فَيَكْشِفُ مَا تَدْعُونَ
إِلَيْهِ إِنْ شَاءَ وَتَنْسَوْنَ مَا تُشْرِكُونَ ﴿٤١﴾ وَلَقَدْ أَرْسَلْنَا
إِلٰى أُمَمٍ مِنْ قَبْلِكَ فَأَخَذْنَاهُمْ بِالْبَأْسَاءِ وَالضَّرَّاءِ لَعَلَّهُمْ
يَتَضَرَّعُونَ ﴿٤٢﴾ فَلَوْلَا إِذْ جَاءَهُمْ بَأْسُنَا تَضَرَّعُوا وَلٰكِنْ
قَسَتْ قُلُوبُهُمْ وَزَيَّنَ لَهُمُ الشَّيْطَانُ مَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿٤٣﴾
فَلَمَّا نَسُوا مَا ذُكِّرُوا بِهِ فَتَحْنَا عَلَيْهِمْ أَبْوَابَ كُلِّ شَيْءٍ حَتّٰى
إِذَا فَرِحُوا بِمَا أُوتُوا أَخَذْنَاهُمْ بَغْتَةً فَإِذَا هُمْ مُبْلِسُونَ ﴿٤٤﴾

36- Bes, yên ku bi erênî bersiva te didin ew in ku ji dil û can guhdarî dikin. Yên mirî (dilmirî û kafir) jî, Xwedê dê wan (roja qiyametê) vejîne û paşê ew ê bi bal Xwedê ve bêne vegerandin.

37- Dîsa gotin: Ma çima mucîzeyek ji nik Perwerdegarê wî jê re nehatiye hinartin? Bibêje: Teqez Xwedê li ser şandina mucîzeyekê qadir e, lê belê pirên wan nizanin.

38- Çi heywanekî ku li erdê bimeşe û çi teyrekî ku bi her du perên xwe (li hewayê) bifire, her ew jî weke we umet in (rewşa wan, rizq û ecelê wan jî hatine nivîsandin). Me tiştek di kitêbê (Lewhul Mehfûzê) de kêm nehiştiye. Paşê ew ê bi bal Perwerdegarê xwe ve li hev bêne civandin.

39- Ew ên ku bi ayetên me bawerî nayînin, di nav tarîtiyên (kufrê) de ker in û lal in. Xwedê kî (rêşaşîyê) bivê wî ji rê dixe û kî jî (hîdayetê) bivê wî tîne ser riyeke rast.

40-(Resûlê min! Ji kafiran re) Bibêje: ka ji min re bibêjin; eger ezabê Xwedê bi ser we de bê, yan jî ji nişka ve qiyamet li we rabe, ma hûn ê ji bilî Xwedê gazî kê bikin? Eger bi rastî hûn (di doza xwedatiya pûtan de) rastgo ne (de gazî wan bikin).

41- (Na, hûn gazî wan nakin!) Belkî hûn ê tenê li ber Xwedê bigerin, vêca eger Xwedê bixwaze, ew belaya ku hûn dixwazin li ser we rabe, dê wê li ser we rake û ew pûtên ku we jê re dikirin hemkûf jî hûn ê wan ji bîr bikin.

42- (Resûlê min!) Bêguman Me ji bo umetên beriya te pêxember şandin, vêca Me bi hejarî û nexweşiyan ew hingaftin da ku bi zarezar û lakelak li ber me bigerin.

43- Vêca dema ezabê me bi ser wan de hat, de bila wan bi bal me ve bikira zarezar. Lê belê dilên wan hişk bû û şeytên jî ya ku wan dikir ji wan re dixemiland û li ber çavê wan xweş dikir.

44- Êdî çi dema ew şîretên ku li wan hatibûn kirin ji bîr kirin, Me jî ji bo wan dergehên hemû tiştî vekirin. Heta bi ya ku ji wan re hatiye dilxweş bûn, îcar ji nişka ve me ew hingaftin (û helak kirin), vêca ji nû ve ew (ji xêrê) bêhêvî bûn.

فَقُطِعَ دَابِرُ الْقَوْمِ الَّذٖينَ ظَلَمُواۜ وَالْحَمْدُ لِلّٰهِ رَبِّ الْعَالَمٖينَ ﴿٤٥﴾
قُلْ اَرَاَيْتُمْ اِنْ اَخَذَ اللّٰهُ سَمْعَكُمْ وَاَبْصَارَكُمْ وَخَتَمَ عَلٰى قُلُوبِكُمْ
مَنْ اِلٰهٌ غَيْرُ اللّٰهِ يَاْتٖيكُمْ بِهٖۜ اُنْظُرْ كَيْفَ نُصَرِّفُ الْاٰيَاتِ ثُمَّ هُمْ
يَصْدِفُونَ ﴿٤٦﴾ قُلْ اَرَاَيْتَكُمْ اِنْ اَتٰيكُمْ عَذَابُ اللّٰهِ بَغْتَةً
اَوْ جَهْرَةً هَلْ يُهْلَكُ اِلَّا الْقَوْمُ الظَّالِمُونَ ﴿٤٧﴾ وَمَا نُرْسِلُ
الْمُرْسَلٖينَ اِلَّا مُبَشِّرٖينَ وَمُنْذِرٖينَۚ فَمَنْ اٰمَنَ وَاَصْلَحَ فَلَا خَوْفٌ
عَلَيْهِمْ وَلَا هُمْ يَحْزَنُونَ ﴿٤٨﴾ وَالَّذٖينَ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا يَمَسُّهُمُ
الْعَذَابُ بِمَا كَانُوا يَفْسُقُونَ ﴿٤٩﴾ قُلْ لَا اَقُولُ لَكُمْ عِنْدٖي
خَزَٓائِنُ اللّٰهِ وَلَٓا اَعْلَمُ الْغَيْبَ وَلَٓا اَقُولُ لَكُمْ اِنّٖي مَلَكٌۚ
اِنْ اَتَّبِعُ اِلَّا مَا يُوحٰٓى اِلَيَّۜ قُلْ هَلْ يَسْتَوِي الْاَعْمٰى وَالْبَصٖيرُۜ
اَفَلَا تَتَفَكَّرُونَ ﴿٥٠﴾ وَاَنْذِرْ بِهِ الَّذٖينَ يَخَافُونَ اَنْ يُحْشَرُٓوا
اِلٰى رَبِّهِمْ لَيْسَ لَهُمْ مِنْ دُونِهٖ وَلِيٌّ وَلَا شَفٖيعٌ لَعَلَّهُمْ يَتَّقُونَ
﴿٥١﴾ وَلَا تَطْرُدِ الَّذٖينَ يَدْعُونَ رَبَّهُمْ بِالْغَدٰوةِ وَالْعَشِيِّ يُرٖيدُونَ
وَجْهَهُۜ مَا عَلَيْكَ مِنْ حِسَابِهِمْ مِنْ شَيْءٍ وَمَا مِنْ حِسَابِكَ
عَلَيْهِمْ مِنْ شَيْءٍ فَتَطْرُدَهُمْ فَتَكُونَ مِنَ الظَّالِمٖينَ ﴿٥٢﴾
وَكَذٰلِكَ

**45**- Vêca (piştî vê rewşê), koka civata sitemkar hate birîn û pesn û spasî ji bo Xwedayê alemê re be.

**46**- Bibêje: De ka ji min re bibêjin eger Ellah Teala guhên we ker bike, çavên we kor bike û ser dilên we mor bike, ma ji bilî Ellah Teala ew kîjan xweda ye ku wan li we vegerîne? De tu binêre, ka çawa em nîşanên (yekîtiya) xwe aşkera dikin, belê ew dîsa berê xwe jê vedigerînin (û îmanê nayînin).

**47**- Bibêje: De heydê ji min re bibêjin: Eger ezabê Xwedê ji nişka ve yan aşkera bi ser we de bê, ma ji bilî civata sitemkar kî dê bête rûxandin?

**48**- Em pêxemberan, tenê wek mizgînber û hişyarker dişînin. Êdî kesê ku baweriyê bi wan bîne û xwe rast û durist bike, ji wan re tu tirs tune ye û ew xemgîn jî nabin.

**49**- Herçî ew ên ku bi ayetên me bawerî neanîn, ji ber ku ji rê derketin, ezab dê wan bihingive.

**50**- Bibêje: Ez ji we re nabêjim ku xezîneyên Xwedê li cem min in û ez bi xeybê nizanim û ez ji we re nabêjim ku ez melayîket im jî. Bes ez didime pey a ku ji min re tête wehîkirin. Bibêje: Erê ma yê kor û yê biçav (yê mumin û yê kafir) wekhev in? Ma qey hûn (di ayetên Xwedê de) nafikirin (da qene hûn bi wan rastiyê nas bikin û bawerî pê bînin).

Di ayeta pîroz de “**Yê kor**” buhurî, mebest jê, yê kafir e, lewra ew e yê ku ber xwe nabîne û xwe di êgir werbike. “**Yê bi çav**” jî buhurî, daxwaz jê, yê bawermend e, lewra ew e yê ku ber xwe dibîne û xwe ji ezabê çetîn diparêze.

**51**- (Resûlê min!) Wan muminên ku ji civandina li ber destê Xwedayê xwe ditirsin tu wan bi Qur’anê hişyar bike ku ji bo wan, ji Xwedayê wan pê ve tu dost û piştevanek nîn e û ne jî mehdervanek, (tu wan agahdar bike) da ku ew xwe (ji gunehan) biparêzin.

Li gorî ji Îbnu Mesûd hatiye ragihandin, giregirên Qureyşiyan hatin cem Pêxember, li cemê Sûheyb, Xebbab, Bilal, Emmar û hin bawermendên xeyrê van dîtin, gotin: Hey Muhemmed! Qey tu di şûna gelê xwe de van divêyî? Qey emê çawa li pey van bên? Qey bi rastî ev in: Yên ku Xwedê qencî li wan kiriye! De ka wan ji cem xwe biqewirîne. Heke tu ji bal xwe berdî wan û wan biqewirînî dibe ku em bidin pey te. Bi vî awayî muşrikan rika xwe ji muminan dianî û hîç nediviyan ku li cem Pêxemberê Xwedê jar û belengazên misliman bibînin. Vêca Xwedê Pêxemberê xwe wiha hişyar kir.

**52**- (Resûlê min!) Tu wan ên ku sibeh û êvarê li ber Xwedayê xwe digerin û rizaya wî dixwazin, neqewirîne! Ji berpirsgirtina wan qet tiştek li ser te nîn e. Ji berpirsgirtina te jî qet tiştek li ser wan nîn e. Êdî eger tu wan biqewirînî, (wê çaxê) tu dê bibî ji sitemkaran.

وَلَا تَقْرَبُوا مَالَ الْيَتٖيمِ اِلَّا بِالَّتٖي هِيَ اَحْسَنُ حَتّٰى يَبْلُغَ
اَشُدَّهُ وَاَوْفُوا الْكَيْلَ وَالْمٖيزَانَ بِالْقِسْطِ لَا نُكَلِّفُ
نَفْسًا اِلَّا وُسْعَهَا وَاِذَا قُلْتُمْ فَاعْدِلُوا وَلَوْ كَانَ ذَا قُرْبٰى
وَبِعَهْدِ اللّٰهِ اَوْفُوا ذٰلِكُمْ وَصّٰيكُمْ بِهٖ لَعَلَّكُمْ تَذَكَّرُونَ
﴿١٥٢﴾ وَاَنَّ هٰذَا صِرَاطٖي مُسْتَقٖيمًا فَاتَّبِعُوهُ وَلَا تَتَّبِعُوا السُّبُلَ
فَتَفَرَّقَ بِكُمْ عَنْ سَبٖيلِهٖ ذٰلِكُمْ وَصّٰيكُمْ بِهٖ لَعَلَّكُمْ تَتَّقُونَ
﴿١٥٣﴾ ثُمَّ اٰتَيْنَا مُوسَى الْكِتَابَ تَمَامًا عَلَى الَّذٖٓي اَحْسَنَ
وَتَفْصٖيلًا لِكُلِّ شَيْءٍ وَهُدًى وَرَحْمَةً لَعَلَّهُمْ بِلِقَٓاءِ
رَبِّهِمْ يُؤْمِنُونَ ﴿١٥٤﴾ وَهٰذَا كِتَابٌ اَنْزَلْنَاهُ مُبَارَكٌ فَاتَّبِعُوهُ
وَاتَّقُوا لَعَلَّكُمْ تُرْحَمُونَ ﴿١٥٥﴾ اَنْ تَقُولُٓوا اِنَّمَٓا اُنْزِلَ الْكِتَابُ
عَلٰى طَٓائِفَتَيْنِ مِنْ قَبْلِنَا وَاِنْ كُنَّا عَنْ دِرَاسَتِهِمْ لَغَافِلٖينَ
﴿١٥٦﴾ اَوْ تَقُولُوا لَوْ اَنَّٓا اُنْزِلَ عَلَيْنَا الْكِتَابُ لَكُنَّٓا اَهْدٰى مِنْهُمْ
فَقَدْ جَٓاءَكُمْ بَيِّنَةٌ مِنْ رَبِّكُمْ وَهُدًى وَرَحْمَةٌ فَمَنْ
اَظْلَمُ مِمَّنْ كَذَّبَ بِاٰيَاتِ اللّٰهِ وَصَدَفَ عَنْهَا سَنَجْزِي الَّذٖينَ
يَصْدِفُونَ عَنْ اٰيَاتِنَا سُٓوءَ الْعَذَابِ بِمَا كَانُوا يَصْدِفُونَ ﴿١٥٧﴾

هَلْ

**152**- Heta sêwî kamil nebe, tenê bi mebesta herî rind nêzî malê wî bibin, pîvan û mêzînê bi dadmendî pêk bînin. Em li her kesî tenê bi qasî hêza wî bar lê dikin. Dema hûn peyivîn jî vêca bi heqî bipeyivin, çendî (yê ku jê re yan li serê tê peyivîn) lêzimekî we yê pir nêz be jî. Peymana ku we daye Xwedê, bi cih bînin. Ev a hatî gotin, qewîtiya Xwedê ye li we, da ku hûn bi bîr bînin.

**153**- Bêguman ev riya min e, riya rast û durist e, bidin pey wê û nedin dûv rêçikên din, vêca ew dê we ji riya Xwedê biqetînin. Ev a hatî gotin, Xwedê bi wê ferman li we kiriye, da ku hûn xwe (ji xerabiyê) biparêzin.

Lewra em naxwazin ku hûn bibêjin: “Kitêb tenê ji bo ku celeban ji yên beriya me re hatiye hinartin.” Ji ayeta 151ê û heta bi vir, ji wan fermanên ku buhurîn re “Deh ferman yan jî deh wesiyet” tê gotin. Ev di şerî’eta hemû pêxamberan de hebûne.

**154**- Paşê me kitêb (Tewrat) ji Mûsa re şand, da ku qenciya me tekûz bibe li ser ê qencîkiriye û bibe şîroye ji her tiştî re û bibe rêberî û dilovanî, da ku ew baweriyê bi çûna ber destê Perwerdegarê xwe bînin.

**155**- Ev (Qur’an) kitêbeke pîroz e ku me ew hinartiye. Vêca bidin pey wê û ji kufrê xwe biparêzin, da ku rehmet li we bê kirin.

**156**- (Me Qur’an ji we re hinart da ku) Hûn nebêjin: Kitêb, tenê ji du taîfeyên beriya me re hatine hinartin û bi rastî jî em ji xwendin û fêrbûna wan bêagah in.

Ji ber ku Tewrat û Incîl ne bi zimanên erebî hatibûn şandin, ereban dikarîbû vê yekê ji xwe re bikin behane û bibêjin: Em zimanê wan fêm nakin, haya me ji fermanên ku di wan de ne, tune ye. Vêca Xwedê ji bo vê behaneyê ji holê rake Qur’an bi zimanê erebî hinart û tu hêncet ji wan re nehişt.

**157**- Yan jî da ku hûn nebêjin: Eger ji me re kitêb bihata şandin em ê ji wan bêhtir têgihiştî bûna. Êdî bêguman daxuyaniyek e ji nik Perwerdegarê we, rêberiyeke hêja û dilovaniyeke pir ji we re hatiye. Vêca ma kî ji kesê ku bi ayetên Xwedê bawerî neyîne û berê xwe ji wan biguherîne, sitemkartir e? Em ê wan kesên ku berê xwe ji ayetên me biguherînin, ji ber berguherîna wan, bi ezabê herî xerab (dijwar) ceza bikin.

هَلْ يَنْظُرُونَ اِلَّٓا اَنْ تَأْتِيَهُمُ الْمَلٰٓئِكَةُ اَوْ يَأْتِيَ رَبُّكَ اَوْ يَأْتِيَ بَعْضُ
اٰيَاتِ رَبِّكَۜ يَوْمَ يَأْتٖي بَعْضُ اٰيَاتِ رَبِّكَ لَا يَنْفَعُ نَفْسًا اٖيمَانُهَا
لَمْ تَكُنْ اٰمَنَتْ مِنْ قَبْلُ اَوْ كَسَبَتْ فٖٓي اٖيمَانِهَا خَيْرًاۜ قُلِ انْتَظِرُٓوا اِنَّا
مُنْتَظِرُونَ ﴿١٥٨﴾ اِنَّ الَّذٖينَ فَرَّقُوا دٖينَهُمْ وَكَانُوا شِيَعًا لَسْتَ
مِنْهُمْ فٖي شَيْءٍۜ اِنَّمَٓا اَمْرُهُمْ اِلَى اللّٰهِ ثُمَّ يُنَبِّئُهُمْ بِمَا كَانُوا يَفْعَلُونَ ﴿١٥٩﴾
مَنْ جَٓاءَ بِالْحَسَنَةِ فَلَهُ عَشْرُ اَمْثَالِهَاۚ وَمَنْ جَٓاءَ بِالسَّيِّئَةِ فَلَا يُجْزٰٓى
اِلَّا مِثْلَهَا وَهُمْ لَا يُظْلَمُونَ ﴿١٦٠﴾ قُلْ اِنَّنٖي هَدٰينٖي رَبّٖٓي اِلٰى صِرَاطٍ
مُسْتَقٖيمٍۚ دٖينًا قِيَمًا مِلَّةَ اِبْرٰهٖيمَ حَنٖيفًاۚ وَمَا كَانَ مِنَ الْمُشْرِكٖينَ
﴿١٦١﴾ قُلْ اِنَّ صَلَاتٖي وَنُسُكٖي وَمَحْيَايَ وَمَمَاتٖي لِلّٰهِ رَبِّ الْعَالَمٖينَۙ
﴿١٦٢﴾ لَا شَرٖيكَ لَهُۚ وَبِذٰلِكَ اُمِرْتُ وَاَنَا اَوَّلُ الْمُسْلِمٖينَ ﴿١٦٣﴾ قُلْ اَغَيْرَ
اللّٰهِ اَبْغٖي رَبًّا وَهُوَ رَبُّ كُلِّ شَيْءٍۜ وَلَا تَكْسِبُ كُلُّ نَفْسٍ اِلَّا
عَلَيْهَاۚ وَلَا تَزِرُ وَازِرَةٌ وِزْرَ اُخْرٰىۚ ثُمَّ اِلٰى رَبِّكُمْ مَرْجِعُكُمْ
فَيُنَبِّئُكُمْ بِمَا كُنْتُمْ فٖيهِ تَخْتَلِفُونَ ﴿١٦٤﴾ وَهُوَ الَّذٖي جَعَلَكُمْ
خَلَٓائِفَ الْاَرْضِ وَرَفَعَ بَعْضَكُمْ فَوْقَ بَعْضٍ دَرَجَاتٍ لِيَبْلُوَكُمْ
فٖي مَٓا اٰتٰيكُمْۜ اِنَّ رَبَّكَ سَرٖيعُ الْعِقَابِۘ وَاِنَّهُ لَغَفُورٌ رَحٖيمٌ ﴿١٦٥﴾

**158**- (Ji bo bawerîyê bînin) Ma hê jî li bendê ne ku melayîket ji bo wan bên (rihên wan bistînin), yan (ezabê) Xwedayê te li wan rabe, yan jî hinek ji mucîzeyên Rebê te bi ser wan de bê?!. Roja ku hin nîşanên Xwedayê te bên (vêca wan mecbûrî îmanê bikin), wê rojê baweriya kesekî feyde nade wî bi egera ku berî wê rojê bawerî neanîbe, yan jî di baweriya xwe de xêrek qezenc nekiribe. Bibêje: De çavnêriya (yekî ji van) bikin, bêguman em jî çavnêriyê dikin.

**159**- Bêguman ew ên ku (wan bawerî bi hinekî îslamê anî û bi hinekî neanî) dînê xwe parçe parçe kirin û ew jî parçe parçe bûn, tiştekî te bi wan re tun e. Tenê karê wan bes spareyî Xwedê ye. Paşê bi tiştê ku kirin dê wan agahdar bike.

Teberanî, ji Hedîsa Ebû Hureyre û Umer kurê Xettab ragihandiye ku seneda her duyan jî hesen e û delîlne din jî hene ku pişta wan bigrin ku Pêxamber gotiye: “Ewên ku parçe parçe bûne” ji vê ummetê ehlê bidet û hewesan in. Ev yek ji mislimanan re wek hişyariyekê ye ku xwe ji tefrîqê dûr bigrin û li pey hewesên xwe neçin. Lêbelê Îbnu Ebbas jî gotiye: Ew cihû û fileh in ku ola pak a Îbrahîm ya ku Xwedê yek didêra, parçe parçe kirine.

**160**- Her kî xêrekê bike vêca jê re deh qatî wê heye. Kî jî neqenciyekê bike, vêca bes ew bi wê tenê tête ceza-kirin û li wan sitemkarî nayê kirin.

**161**- (Resûlê min!) Bibêje: Bêguman Xwedayê min ez bi bal riyeke rast ve rasterê kirime ku riya rast û bêçewtî ye; dînê pak ê Îbrahîm e ku ji xwariyê veder e. Ew (Îbrahîm) bi xwe jî ne ji muşrikan bû.

**162**- Bibêje: Bêguman nimêja min, îbadetên min, saxiya min û mirina min tev ji bo perwerdegarê alemê Ellah Teala ne.

**163**- Ji Xwedê Teala re, tu hemkûf nîn in û ez bi vê hatime fermankirin û ez pêşîkê mislimanan im.

**164**- Bibêje: Ma digel ku ew perwerdegarê her tiştî ye ez ê ji bilî Ellah Teala li perwerdegarekî dî bigerim? Qezenca her kesî jê re ye. Tu kes, gunehê tu kesî hilnagire. Paşê vegera we bi bal Xwedayê we ve ye. Vêca dê we bi ya ku hûn tê de li dijî hev diçûn, agahdar bike.

**165**- Xwedê Teala ye, yê ku hûn li ser erdê kirine şungirên hev û mertebe bi mertebe hûn di ser hev re girtine da ku der barê qenciya ku daye we de, we îmtîhan bike. Bêguman Xwedayê te cezadana wî bi lez e û bêguman Ew e gunehjêbir, Ew e dilovîn.



## SÛREYÊ E'RAF

Sûreyê Eraf, li Mekkê daketiye. 206 (du sed û şeş) ayet e. Ji ber ku di ayeta 46'em û ya 48'em de behsa e'rafê kiriye, jê re ev nav hatiye gotin. E'raf, ji bo wan sûrên bilind ên di navbera xelkê bihiştê û xelkê dojehê de ne, ku hin mirovên xêr û gunehên wan bi qasî hev in û heta ku Xwedê hukmê xwe di bara wan de diyar bike li wê derê dimînin, hatiye gotin: "El-Eraf (sûrên navbera dojeh û bihiştê). Sûreyê E'raf, bi kitekiteyî behsa qiseyên pêxamberan dike, li ser yekdêrîna Xwedê Teala, saxbûna piştî mirinê û li ser padaş û sezayê disekine.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

1- Elîf, Lam, Mîm, Sad.

2- (Resûlê min!) Ev (Qur'an) kitêbek e ku ji bo te hatiye şandin, vêca bila (bi sebunet helwesta muşrikan a li hemberî te û bi sebunet ragihandin û şiroveya wê) tengasiyek di sînga te de çênebe, (me ev kitêb şand) da ku tu pê mirovan (ji ezabê Xwedê) bitirsînî û ku (ew) ji bawermendan re bibe şîret û bîranîn.

3- (Gelî mirovan!) Bidin pey kitêba ku ji cem Xwedayê we ji we re hatiye û ji bilî Xwedê Teala nedin pey tu dost û arîkaran. (Bi rastî) hûn pir kêm şîretan werdigirin.

4- Me pir gund û bajar wêran kirin, vêca ezabê me bi şev an jî di xewa nîvro de bi ser wan de hat.

5- Dema ezabê me bi ser wan de hat, bes ev digotin: Bêguman em sitemkar bûn.

6- Sond be, em ê wan ên ku pêxember ji wan re hatine şandin berpirs bigirin, sond be ku em ê pêxemberan jî berpirs bigirin.

7- Sond be, êdî ya ku di navbera wan de qewimiye em ê bi zanîn ji wan re bibêjin û em ji wan (di her gav û rewşê de) ne bêhay û xafil bûn.

8- Roja qiyametê kêşan (a xêr û gunehan) rast û heq e. Vêca kî ku kêşana xêrên wî giran be, êdî ha ew, yên serkeftî her bi xwe ne.

9- Çi kesê ku kêşana xêrên wî sivik be (û kêşana gunehên wî giran be), vêca ha ew in yên ku bi sebunet li ayetên me sitemkarî kirin (ew mandel kirin) xwe xistine ziyanê.

10- Sond be, Me hûn li ser erdê bi cih kirin û me li wê derê derfet û navgînên jiyanborandinê ji we re bi kar anîn, (digel vê jî) hûn pir hindik (Xwedayê xwe) dişêkirînin.

11- Sond be, me (Ademê bavê) we afirand, paşê me şekil û awa dayê. Paşê me ji melayîketan re got: Ji Adem re herin sicûdê. Ji bilî Îblîs/Şeytên tev çûne sicûdê, (Lê belê) ew nebû ji secdebiran.

قَالَ مَا مَنَعَكَ اَلَّا تَسْجُدَ اِذْ اَمَرْتُكَ قَالَ اَنَا خَيْرٌ مِنْهُ خَلَقْتَنٖى مِنْ
نَارٍ وَخَلَقْتَهُ مِنْ طٖينٍ ﴿١٢﴾ قَالَ فَاهْبِطْ مِنْهَا فَمَا يَكُونُ لَكَ اَنْ تَتَكَبَّرَ
فٖيهَا فَاخْرُجْ اِنَّكَ مِنَ الصَّاغِرٖينَ ﴿١٣﴾ قَالَ اَنْظِرْنٖى اِلٰى يَوْمِ يُبْعَثُونَ
﴿١٤﴾ قَالَ اِنَّكَ مِنَ الْمُنْظَرٖينَ ﴿١٥﴾ قَالَ فَبِمَا اَغْوَيْتَنٖى لَاَقْعُدَنَّ لَهُمْ
صِرَاطَكَ الْمُسْتَقٖيمَ ﴿١٦﴾ ثُمَّ لَاٰتِيَنَّهُمْ مِنْ بَيْنِ اَيْدٖيهِمْ وَمِنْ خَلْفِهِمْ
وَعَنْ اَيْمَانِهِمْ وَعَنْ شَمَائِلِهِمْ وَلَا تَجِدُ اَكْثَرَهُمْ شَاكِرٖينَ ﴿١٧﴾ قَالَ
اخْرُجْ مِنْهَا مَذْؤُمًا مَدْحُورًا لَمَنْ تَبِعَكَ مِنْهُمْ لَاَمْلَئَنَّ جَهَنَّمَ مِنْكُمْ
اَجْمَعٖينَ ﴿١٨﴾ وَيَا اٰدَمُ اسْكُنْ اَنْتَ وَزَوْجُكَ الْجَنَّةَ فَكُلَا مِنْ حَيْثُ
شِئْتُمَا وَلَا تَقْرَبَا هٰذِهِ الشَّجَرَةَ فَتَكُونَا مِنَ الظَّالِمٖينَ ﴿١٩﴾ فَوَسْوَسَ
لَهُمَا الشَّيْطَانُ لِيُبْدِيَ لَهُمَا مَا وُرِيَ عَنْهُمَا مِنْ سَوْاٰتِهِمَا وَقَالَ
مَا نَهٰيكُمَا رَبُّكُمَا عَنْ هٰذِهِ الشَّجَرَةِ اِلَّا اَنْ تَكُونَا مَلَكَيْنِ اَوْ تَكُونَا
مِنَ الْخَالِدٖينَ ﴿٢٠﴾ وَقَاسَمَهُمَا اِنّٖى لَكُمَا لَمِنَ النَّاصِحٖينَ ﴿٢١﴾ فَدَلّٰيهُمَا
بِغُرُورٍ فَلَمَّا ذَاقَا الشَّجَرَةَ بَدَتْ لَهُمَا سَوْاٰتُهُمَا وَطَفِقَا يَخْصِفَانِ
عَلَيْهِمَا مِنْ وَرَقِ الْجَنَّةِ وَنَادٰيهُمَا رَبُّهُمَا اَلَمْ اَنْهَكُمَا عَنْ تِلْكُمَا
الشَّجَرَةِ وَاَقُلْ لَكُمَا اِنَّ الشَّيْطَانَ لَكُمَا عَدُوٌّ مُبٖينٌ ﴿٢٢﴾

**12**- Xwedê Teala ji (şeytên) re got: Dema min fermana sicûdê li te kir, ew çi bû ku nehişt tu biçî sicûdê? (Îblîs) Got: Ez ji wî çêtir im, (lewre) Te ez ji êgir afirandime û te ew ji heriyê afirandiye.

**13**- (Xwedê) got: Nexwe ji wê (bihiştê) dakeve, vêca mafê te nîn e ku tu xwe li wê derê mezin bidêrî, de derkeve. Bêguman tu ji rezîl û riswayan î.

**14**- (Îblîs) Got: Heta roja ku mirî ji tirban radibin keysê (muhletê) bide min (heya wê demê min sax bihêle).

**15**- (Xwedê) Got: Bêguman tu ji yên muhletdayî yî.

**16**- (Îblîs) Got: Ji ber ku Te ez rêwinda kirim, ez sond dixwim ku ez ê li ser riya Te ya rast rûnim û ez ê li ber mirovan kemînê deynim da ku wan ji rê bixim.

**17**- Piştre ez ê ji pêş wan û ji pişt wan ve, ji rastê wan û ji çepê wan ve teqez dê bême wan û Tu dê pirên wan jî şêkirdar nebînî!

**18**- Xwedê Teala (ji şeytên re) got: De heydê bi riswayî û qeşitî ji wir derkeve! Sond be, ez ê dojehê ji ademiyan ên ku bidin dûv te û ji we hemûyan cehenemê dagirim.

Gava şeytan li ber fermana Xwedê Teala rabû û ji Adem re secde nebir. Ellah Teala ew ji cennetê yan jî ji asîman qewitand. Vêca di navbera Xwedê û şeytên de ew hevpeyvîna ku li jor buhurî, pêk hat. Rastî ew e ku Ellah Teala heta roja qiyametê fersend û derfeta jiyanê û jirêbirina mirovan daye şeytanê le'în. Lêbelê kesê ku li dûv wî here, Xwedê Teala dê wî bi şeytên re bixe dojehê û ev xeber ji xelkê re jî daye xuyakirin. Nuqteyeke din a balkêş ew e ku Şeytan, pêşî li ber Xwedê şerê germ kiriye, piştî ku şikest û têk çû ji nû dest bi şerê sar û têkoşîna ramyarî kiriye!

**19**- (Xwedê Teala got:) Ey Adem! Tu û kebaniya xwe (Hewwa) li bihiştê bi cih bibin, hûn çawa divên wisa jê bixwin. Lê belê, nêzî vê dara hanê nebin, (eger hûn jê bixwin) êdî hûn ê bibin ji sitemkaran.

**20**- Şeytên, ji bo ku ji dara qedexekirî bixwin ji her duyan re tasawas çêkir û da şermegeha (ewretê) wan a veşartî nîşanî wan bide. (Ji wan re) got: Bes ji bo ku hûn nebin melek, an jî hûn heta bi hetayê lê nemînin, Xwedayê we hûn ji (xwarina) vê darê dane paş.

**21**- Ji wan re sond xwar (û got): Bi rastî ez her ji bo we şîretkar im.

**22**- Êdî bi hîle û pîle dar raveyî wan kir. Çi dema ji mêweyên wê xwarin, şermegeha wan, ji wan ve diyar bû û hema dest avêtin pelên darên bihiştê û xwe pê nixumandin. Xwedayê wan gazî wan kir: Ma min ev dar li we qedexe nekiribû? Ma min ji we re negotibû Şeytan ji we re neyarekî aşkera ye?!

قَالَا رَبَّنَا ظَلَمْنَا اَنْفُسَنَا وَاِنْ لَمْ تَغْفِرْ لَنَا وَتَرْحَمْنَا لَنَكُونَنَّ
مِنَ الْخَاسِرِينَ ﴿٢٣﴾ قَالَ اهْبِطُوا بَعْضُكُمْ لِبَعْضٍ عَدُوٌّ وَلَكُمْ فِى
الْاَرْضِ مُسْتَقَرٌّ وَمَتَاعٌ اِلٰى حِينٍ ﴿٢٤﴾ قَالَ فِيهَا تَحْيَوْنَ وَفِيهَا
تَمُوتُونَ وَمِنْهَا تُخْرَجُونَ ﴿٢٥﴾ يَا بَنِى اٰدَمَ قَدْ اَنْزَلْنَا عَلَيْكُمْ لِبَاسًا
يُوَارِى سَوْاٰتِكُمْ وَرِيشًا وَلِبَاسُ التَّقْوٰى ذٰلِكَ خَيْرٌ ذٰلِكَ
مِنْ اٰيَاتِ اللّٰهِ لَعَلَّهُمْ يَذَّكَّرُونَ ﴿٢٦﴾ يَا بَنِى اٰدَمَ لَا يَفْتِنَنَّكُمُ
الشَّيْطَانُ كَمَا اَخْرَجَ اَبَوَيْكُمْ مِنَ الْجَنَّةِ يَنْزِعُ عَنْهُمَا لِبَاسَهُمَا
لِيُرِيَهُمَا سَوْاٰتِهِمَا اِنَّهُ يَرٰيكُمْ هُوَ وَقَبِيلُهُ مِنْ حَيْثُ لَا تَرَوْنَهُمْ
اِنَّا جَعَلْنَا الشَّيَاطِينَ اَوْلِيَاءَ لِلَّذِينَ لَا يُؤْمِنُونَ ﴿٢٧﴾ وَاِذَا
فَعَلُوا فَاحِشَةً قَالُوا وَجَدْنَا عَلَيْهَا اٰبَاءَنَا وَاللّٰهُ اَمَرَنَا بِهَا
قُلْ اِنَّ اللّٰهَ لَا يَأْمُرُ بِالْفَحْشَاءِ اَتَقُولُونَ عَلَى اللّٰهِ مَا لَا تَعْلَمُونَ
﴿٢٨﴾ قُلْ اَمَرَ رَبِّى بِالْقِسْطِ وَاَقِيمُوا وُجُوهَكُمْ عِنْدَ كُلِّ مَسْجِدٍ
وَادْعُوهُ مُخْلِصِينَ لَهُ الدِّينَ كَمَا بَدَاَكُمْ تَعُودُونَ ﴿٢٩﴾ فَرِيقًا
هَدٰى وَفَرِيقًا حَقَّ عَلَيْهِمُ الضَّلَالَةُ اِنَّهُمُ اتَّخَذُوا الشَّيَاطِينَ
اَوْلِيَاءَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ وَيَحْسَبُونَ اَنَّهُمْ مُهْتَدُونَ ﴿٣٠﴾

يَا بَنِى

23- (Adem û Hewwa) Gotin: Xwedayê me! Me neheqî li xwe kir, eger Tu li me neborî û rehmê li me nekî, teqez em ê bibin ji yên xesirî.

24- (Xwedê Teala) got: De (ji cenetê) dakevin xwarê ku hûn ê ji hev re bi dijminahî bin û heta demeke diyarkirî (heta mirinê) li erdê ji bo we wargeh û jiyanborandin heye.

25- (Xwedê Teala) got: Hûn ê li ser erdê bijîn û hûn ê lê bimirin û (ji bo hesabdayînê) hûn ê jê bên deranîn.

26- Gelî zarokên Adem! Me ji we re cileke wisa daxistiye ku hûn pê ewretê xwe binixumînin û cilek jî ji bo xemilandinê. Lê cila teqwayê (hayjêmayîna ferman û qedexeyên Xwedê) hê jî çêtir e. Ha ev ji ayetên Xwedê Teala ne da ku ew bifikirin û şîretan jê wergirin.

27- Gelî zarokên Adem! Bila şeytan we jî nexapîne ka çawa dê û bavên we (Adem û Hewwa) ji bihiştê derxistin û cilên wan ji wan kirin da ku ewretên wan nîşanî wan bide. Bêguman şeytan û êla xwe we dibînin û hûn wan nabînin. Bêguman me şeytan ji bo wan kesên ku baweriyê nayînin kiriye dost û arîkar.

Şeytan, ji ber ku ji cinan e, bi awayekî ku mirov wî nabîne xwe nêzî mirovî dike û ji mirovî re tase-wasê çêdike. Digel vê jî dibe ku Şeytan di şiklê cur bi cur de were hemberê mirov û were dîtin jî. Bi rastî ev ayeta pîroz “cilê wan ji wan kir da ku ewretê wan nîşanî wan bide” armanca Îblîsê kor eşkere dike ku xwestiye jinê tazî bike. Mixabin! Îro li welatê Îslamê çi qas pir kesên sînsî û mebestçepel hene ku bi navê “Azadî û Wekhevî”yê, bi navê “ Pêşveçûn, Pêşverûtî û Modernîzmê ” gazî li jinê dike da ku xwe tazî bike, xwe serqot bike, çîp û zendê xwe veke ji bo ku ji şehwetperest re bibe nêçîreke rehet û bi xwe re pir kesan ji rê bixe û exlaq û şermî rabe. Bêguman ew kesê ku vê dozê bike neyarê jinê ye, dost û yarê Şeytên e.

28- Dema ew (muşrik) neqenciyekê bikin, dibêjin: “Me bav û kalên xwe li ser vê riyê dîtine û Xwedê Teala jî pê ferman li me kiriye.” (Resûlê min!) Bibêje: “Bêguman Xwedê bi neqenciyê ferman nake. Ma hûn li ser (navê) Xwedê tiştê ku hûn nizanin, dibêjin?”

29- (Resûlê min!) Bibêje: “Xwedayê min bi dadiyê (edaletê) ferman kiriye. Li nik çûna her mizgeftê berê xwe bidine Xwedê û ji dil û can îbadetê wî bikin. Çawa ku wî hûn cara pêşîn afirandin dê piştî mirinê dîsa we vejîne.”

30- Xwedê, celebek aniye ser riya rast û celebek jî rêşaşî li serê misoger bûye. Bêguman ew ji bilî Xwedê Teala şeytan ji bo xwe kirine dost û piştevan û ji wan we ye ku ew li ser riya rast rasterêbûyî ne.

يَا بَن۪ٓي اٰدَمَ خُذُوا ز۪ينَتَكُمْ عِنْدَ كُلِّ مَسْجِدٍ وَكُلُوا وَاشْرَبُوا
وَلَا تُسْرِفُواۚ اِنَّهُ لَا يُحِبُّ الْمُسْرِف۪ينَ ﴿٣١﴾ قُلْ مَنْ حَرَّمَ ز۪ينَةَ اللّٰهِ
الَّت۪ٓي اَخْرَجَ لِعِبَادِه۪ وَالطَّيِّبَاتِ مِنَ الرِّزْقِۜ قُلْ هِيَ لِلَّذ۪ينَ اٰمَنُوا
فِي الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا خَالِصَةً يَوْمَ الْقِيٰمَةِۜ كَذٰلِكَ نُفَصِّلُ الْاٰيَاتِ
لِقَوْمٍ يَعْلَمُونَ ﴿٣٢﴾ قُلْ اِنَّمَا حَرَّمَ رَبِّيَ الْفَوَاحِشَ مَا ظَهَرَ مِنْهَا
وَمَا بَطَنَ وَالْاِثْمَ وَالْبَغْيَ بِغَيْرِ الْحَقِّ وَاَنْ تُشْرِكُوا بِاللّٰهِ مَا لَمْ يُنَزِّلْ
بِه۪ سُلْطَانًا وَاَنْ تَقُولُوا عَلَى اللّٰهِ مَا لَا تَعْلَمُونَ ﴿٣٣﴾ وَلِكُلِّ اُمَّةٍ
اَجَلٌۚ فَاِذَا جَٓاءَ اَجَلُهُمْ لَا يَسْتَأْخِرُونَ سَاعَةً وَلَا يَسْتَقْدِمُونَ
﴿٣٤﴾ يَا بَن۪ٓي اٰدَمَ اِمَّا يَأْتِيَنَّكُمْ رُسُلٌ مِنْكُمْ يَقُصُّونَ عَلَيْكُمْ اٰيَات۪يۙ
فَمَنِ اتَّقٰى وَاَصْلَحَ فَلَا خَوْفٌ عَلَيْهِمْ وَلَا هُمْ يَحْزَنُونَ ﴿٣٥﴾ وَالَّذ۪ينَ
كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا وَاسْتَكْبَرُوا عَنْهَٓا اُو۬لٰٓئِكَ اَصْحَابُ النَّارِۚ هُمْ ف۪يهَا
خَالِدُونَ ﴿٣٦﴾ فَمَنْ اَظْلَمُ مِمَّنِ افْتَرٰى عَلَى اللّٰهِ كَذِبًا اَوْ كَذَّبَ بِاٰيَاتِه۪ۜ
اُو۬لٰٓئِكَ يَنَالُهُمْ نَص۪يبُهُمْ مِنَ الْكِتَابِۜ حَتّٰٓى اِذَا جَٓاءَتْهُمْ رُسُلُنَا
يَتَوَفَّوْنَهُمْۙ قَالُٓوا اَيْنَ مَا كُنْتُمْ تَدْعُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِۜ قَالُوا ضَلُّوا
عَنَّا وَشَهِدُوا عَلٰٓى اَنْفُسِهِمْ اَنَّهُمْ كَانُوا كَافِر۪ينَ ﴿٣٧﴾

31- Ey zarokên Adem! Cila ku hûn xwe pê dixemilînin (dinixûmînin) li cem kirina her nimêjê wergirin. Bixwin, vexwin û îsrafê (destbelaviyê) mekin, bêguman Xwedê ji yên destbelav hez nake.

Îslam, spehîtî û paqijiyê bingeh qebûl dike. Divê misliman cileke ku ewretê wî binixumîne li xwe bike. Lê bi şertê ku îsrafê neke, sunnet e ku her misliman di îbadetê de cilê xwe yê herî spehî li xwe bike.

32- (Resûlê min!) Bibêje: Ew xemla ku Xwedê ji evdên xwe re deranî û ew rizqên pak û xweş ma kê heram kirine? Bibêje: Ew li jiyana dinyayê ji bo yên ku bawerî aniye û bi taybetî jî roja qiyametê. Her wiha em ayetên xwe ji civateke têgihiştî re bi dorfirehî aşkera dikin.

33- (Resûlê min!) Bibêje: Bêguman Xwedayê min, bes neqenciyên aşkera û yên veşarî, gunehkarî û destdirêjiya mafê dîgeran, bêyî ku delîleke we hebe ku hûn ji Xwedê re şirîkan çêkin û der barê (nav û sifetên) Xwedê de ku hûn bi nezanî xeber bidin, (ha ev tev Xwedê li we) qedexe kirine.

34- Ji her umetekî re civanekî wê (yê kifşkirî) heye. Êdî dema civana wan bê, ew nikarin wê saetekê bidin paş û beriya civanê wan bê jî ew nikarin bidin pêş.

35- Gelî zaroyên Adem! Eger ji nav we pêxemberên min ji we re bên û ayetên min ji we re bibêjin, êdî kî xwe (ji dijberiya wan) biparêze û (bi emelê salih) xwe rind bike, vêca ne li ser wan tirs heye ne jî ew xemgîn dibin.

36- Ew ên ku bi ayetên me baweriyê nayînin û li xwe nenihane (ku pê baweriyê bînin), ew xelkê êgir in, ew heta bi hetayê dê tê de bimînin.

37- Vêca ma ji wî kesê ku li ser (navê) Xwedê Teala neweyî biaxive yan jî bi ayetên wî baweriyê neyîne, zalimtir kî heye? Ev ên ha, para wan (ji ezab) a ku di Lewhul Mehfûzê de nivisî dê bigihîje wan; heta dema qasidên me (yên canstên) ku canê wan bistînin têne cem wan, dibêjin: Ma kanê ew ên ku we di şûna Xwedê Teala de ew dihebandin? Dibêjin: Ji ber me winda bûn û (hingê) li ser nefsa xwe şahdeyî didin ku bi rastî wan (li dinyayê) bawerî neanîbû.

قَالَ ادْخُلُوا فِىٓ اُمَمٍ قَدْ خَلَتْ مِنْ قَبْلِكُمْ مِنَ الْجِنِّ وَالْاِنْسِ
فِى النَّارِۜ كُلَّمَا دَخَلَتْ اُمَّةٌ لَعَنَتْ اُخْتَهَاۜ حَتّٰٓى اِذَا ادَّارَكُوا فِيهَا
جَمِيعًاۙ قَالَتْ اُخْرٰيهُمْ لِاُولٰيهُمْ رَبَّنَا هٰٓؤُ۬لَٓاءِ اَضَلُّونَا فَاٰتِهِمْ
عَذَابًا ضِعْفًا مِنَ النَّارِۜ قَالَ لِكُلٍّ ضِعْفٌ وَلٰكِنْ لَا تَعْلَمُونَ
﴿٣٨﴾ وَقَالَتْ اُو۫لٰيهُمْ لِاُخْرٰيهُمْ فَمَا كَانَ لَكُمْ عَلَيْنَا مِنْ فَضْلٍ
فَذُوقُوا الْعَذَابَ بِمَا كُنْتُمْ تَكْسِبُونَ ﴿٣٩﴾ اِنَّ الَّذِينَ كَذَّبُوا
بِاٰيَاتِنَا وَاسْتَكْبَرُوا عَنْهَا لَا تُفَتَّحُ لَهُمْ اَبْوَابُ السَّمَٓاءِ وَلَا
يَدْخُلُونَ الْجَنَّةَ حَتّٰى يَلِجَ الْجَمَلُ فِى سَمِّ الْخِيَاطِۜ وَكَذٰلِكَ
نَجْزِى الْمُجْرِمِينَ ﴿٤٠﴾ لَهُمْ مِنْ جَهَنَّمَ مِهَادٌ وَمِنْ فَوْقِهِمْ غَوَاشٍۜ
وَكَذٰلِكَ نَجْزِى الظَّالِمِينَ ﴿٤١﴾ وَالَّذِينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ
لَا نُكَلِّفُ نَفْسًا اِلَّا وُسْعَهَٓاۘ اُو۬لٰٓئِكَ اَصْحَابُ الْجَنَّةِۚ هُمْ فِيهَا
خَالِدُونَ ﴿٤٢﴾ وَنَزَعْنَا مَا فِى صُدُورِهِمْ مِنْ غِلٍّ تَجْرِى مِنْ تَحْتِهِمُ
الْاَنْهَارُۚ وَقَالُوا الْحَمْدُ لِلّٰهِ الَّذِى هَدٰينَا لِهٰذَا وَمَا كُنَّا لِنَهْتَدِىَ
لَوْلَٓا اَنْ هَدٰينَا اللّٰهُۚ لَقَدْ جَٓاءَتْ رُسُلُ رَبِّنَا بِالْحَقِّۜ
وَنُودُٓوا اَنْ تِلْكُمُ الْجَنَّةُ اُورِثْتُمُوهَا بِمَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿٤٣﴾

وَنَادٰٓى

**38**- (Xwedê Teala roja qiyametê ji wan re dibêje): Hûn ê jî di nav wan umetên ji cin û însanan de yên ku beriya we bihurîne, bikevin êgir. Her ku umetek bikeve êgir, lanetê li rêhevala xwe tîne. Heta ku ew hemû li pey hev di êgir de kom dibin; yên paşî (dûvketiyên giregire) çê li yên pêşî (serokên xwe) dikin, dibêjin: Xwedayê me! Ha van em ji rê xistin! Vêca ji êgir ezabekî zêde bide wan. Xwedê Teala (ji wan re) dibêje: Ji her yekî ji we û ji wan re ezabekî zêde heye, lê belê hûn nizanin.

Ew rêberên ku berê civatan didin rêya şaş, ji ber ku ew bi xwe kafir in, hem ji ber ku berê xelkê didin rêya çewt û şaş ji wan re du qet ezab heye. Ew civat û elêlatên ku li pey rêberên jirêderketî diçin/biçin, ji wan re jî du qet ezab heye, ji ber ku hem ew bi xwe kafir in, hem ji ber ku di rêya rêberên rêşaş de çûne.

**39**- Pêşengên wan ji dûvketiyên xwe re dibêjin: Êdî hûn ji me ne çêtir in (em û hûn di kufr û rêşaşiyê de wekhev in). (Xwedê Teala dibêje:) Nexwe hûn jî bi sedema gunehên ku we kirine, ezabê biçêjin!

**40**- Bêguman ew ên ku bi ayetên me baweriyê neanîn û xwe mezin dîtin (li xwe nenihan ku bi wan baweriyê bînin) heta deve di qulika derziyê re derbas nebe, deriyên asîmanan (li qencî û rewanên wan) venabin û ew naçin bihiştê. Her wisa em gunehkaran ceza dikin.

**41**- Ji kafiran re ji agirê cehenemê doşek û li ser wan jî (her wiha) lihêf hene û bi vî rengî em zaliman ceza dikin!

**42**- Ew ên ku bawerî anîn û karên rind kirin -em tu kesî zêdeyî hêza wî binbar nakin- ew xelkê bihiştê ne û ew ê heta bi hetayê tê de bimînin.

Di ayeta pîroz de, Ellah Teala daye zanîn ku emr û nehyên wî ne zêdeyî hêza mirovan e û soza bihiştê daye wanên ku îman anîne û karê qenc kirine. Herwiha kafiran jî hişyar dike ku bihişt digel ku nî'metên wê gelek mezin in jî, lêbelê însan dikare bi xebateke hindik, bêzehmetî û bi rehetî bigihîje wan.

**43**- Me kîn û hesûdî ya di dilê wan (cennetîyan) de ji wan bir ku di bin wan re çem diherikin û gotin: Pesn û spasî her ji Xwedê Teala re bin ku em bi vê yekê serwext kirin. Eger Xwedê Teala em pê serwext nekirina, em qet tê nedigihiştin. Sond be, qasidên Xwedayê me digel heqiyê hatine. Gazî li wan hate kirin, ev ceneta ku hûn tê de ne, we bi kar û kiryarên xwe bi dest xwe ve aniye.

وَنَادٰٓى اَصْحَابُ الْجَنَّةِ اَصْحَابَ النَّارِ اَنْ قَدْ وَجَدْنَا مَا وَعَدَنَا
رَبُّنَا حَقًّا فَهَلْ وَجَدْتُمْ مَا وَعَدَ رَبُّكُمْ حَقًّا قَالُوا نَعَمْ فَاَذَّنَ
مُؤَذِّنٌ بَيْنَهُمْ اَنْ لَعْنَةُ اللّٰهِ عَلَى الظَّالِمِينَ ﴿٤٤﴾ اَلَّذِينَ يَصُدُّونَ
عَنْ سَبِيلِ اللّٰهِ وَيَبْغُونَهَا عِوَجًا وَهُمْ بِالْاٰخِرَةِ كَافِرُونَ ﴿٤٥﴾
وَبَيْنَهُمَا حِجَابٌ وَعَلَى الْاَعْرَافِ رِجَالٌ يَعْرِفُونَ كُلًّا بِسِيمٰيهُمْ
وَنَادَوْا اَصْحَابَ الْجَنَّةِ اَنْ سَلَامٌ عَلَيْكُمْ لَمْ يَدْخُلُوهَا وَهُمْ
يَطْمَعُونَ ﴿٤٦﴾ وَاِذَا صُرِفَتْ اَبْصَارُهُمْ تِلْقَٓاءَ اَصْحَابِ النَّارِ قَالُوا
رَبَّنَا لَا تَجْعَلْنَا مَعَ الْقَوْمِ الظَّالِمِينَ ﴿٤٧﴾ وَنَادٰٓى اَصْحَابُ الْاَعْرَافِ
رِجَالًا يَعْرِفُونَهُمْ بِسِيمٰيهُمْ قَالُوا مَٓا اَغْنٰى عَنْكُمْ جَمْعُكُمْ وَمَا
كُنْتُمْ تَسْتَكْبِرُونَ ﴿٤٨﴾ اَهٰٓؤُلَٓاءِ الَّذِينَ اَقْسَمْتُمْ لَا يَنَالُهُمُ اللّٰهُ بِرَحْمَةٍ
اُدْخُلُوا الْجَنَّةَ لَا خَوْفٌ عَلَيْكُمْ وَلَٓا اَنْتُمْ تَحْزَنُونَ ﴿٤٩﴾ وَنَادٰٓى
اَصْحَابُ النَّارِ اَصْحَابَ الْجَنَّةِ اَنْ اَفِيضُوا عَلَيْنَا مِنَ الْمَٓاءِ اَوْ مِمَّا
رَزَقَكُمُ اللّٰهُ قَالُٓوا اِنَّ اللّٰهَ حَرَّمَهُمَا عَلَى الْكَافِرِينَ ﴿٥٠﴾ اَلَّذِينَ
اتَّخَذُوا دِينَهُمْ لَهْوًا وَلَعِبًا وَغَرَّتْهُمُ الْحَيٰوةُ الدُّنْيَا فَالْيَوْمَ نَنْسٰيهُمْ
كَمَا نَسُوا لِقَٓاءَ يَوْمِهِمْ هٰذَا وَمَا كَانُوا بِاٰيَاتِنَا يَجْحَدُونَ ﴿٥١﴾

حِزْبٌ ٤

**44**- Xelkê cenetê, gazî xelkê cehenemê dikin (û ji wan re dibêjin): Bêguman em gihîştine wê peymana ku Xwedayê me ji bo me dabû, ma hûn jî rastî wê soza ku Xwedayê we ji we re dabû hatin? Ew jî dibêjin: Erê, em rastî wê hatin. Veca di navbera wan de banghildêrekî bang kir: Leneta Xwedê (dûrbûna ji dilovaniya wî) li ser zaliman be!

**45**- Ew (zalim) ên ku ji riya Xwedê (mirovan) dadigerînin û dixwazin riya Xwedê çewt û xwar nîşan bidin û ew bi axretê (û ya tê de) baweriyê nayînin.

**46**- Di navbera her duyan de (bihiştî û cehenemiyan de) navberek (bi navê erafê) heye. Li ser sûra erafê mirovinên ku (bihiştî û cehnemiyan) bi nîşanên wan nas dikin hene. Gazî ehlê cenetê dikin: Silav (ewleyî û aramî) li ser we be! Ew (ehlê erafê) hê jî neçûne bihiştê lê bi hêvî ne ku ew dê biçinê.

**47**- Dema berê wan bi hêla ehlê êgir ve tê vegerandin, dibêjin: Xwedayê me! Me negerîne digel qewmê sitemkar.

**48**- Xelkê erafê gazî hinek zilaman dikin ku ew ji rûdêmên wan, wan nas dikin (ku ew bêbawer in), dibêjin: Ne piraniya we (ya di mal û kesan de) ne jî xwemezindêriya we (ku we ji pozbilindî bawerî nedianî) tu feyde neda we.

**49**- (Paşê Xwedê îşaretî bal hin kesên ku li dinyayê xizan û lawaz bûn dike û ji ehlê êgir re dibêje:) Ma evê ha bûn, ew ên ku we sond dixwar ku Xwedê dilovaniyê li wan nake (û naçine cenetê)? (Paşê ji wan re tê gotin:) De têkevin cenetê, ne tirs ji bo we heye ne jî hûn xemgîn dibin.

**50**- Xelkê cehenemê gazî xelkê cenetê dikin (dibêjin): De ka hinekî ji ava xwe yan jî hinekî ji rizqê ku Xwedê daye we bi ser me de birêjin! (Xelkê cenetê) dibêjin: Bêguman Xwedê Teala ev (av û xwarin) li ser kafiran heram kiriye.

**51**- (Yên ku Xwedê ew ji ni'metên cenetî mehrûm kirin) ew ên ku dînê xwe ji xwe re kirine kêf û lîstik û jiyana gerdûnê ew xapandine. Êdî çawa wan pêrgîhatina vê rojê ji bîr kir û ayetên me mandel kirin, îro em ê jî wan ji bîr bikin û guhê xwe nedin wan.

وَلَقَدْ جِئْنَاهُمْ بِكِتَابٍ فَصَّلْنَاهُ عَلٰى عِلْمٍ هُدًى وَرَحْمَةً
لِقَوْمٍ يُؤْمِنُونَ ﴿٥٢﴾ هَلْ يَنْظُرُونَ اِلَّا تَأْوِيلَهُۜ يَوْمَ يَأْتِى تَأْوِيلُهُ
يَقُولُ الَّذِينَ نَسُوهُ مِنْ قَبْلُ قَدْ جَٓاءَتْ رُسُلُ رَبِّنَا بِالْحَقِّۚ
فَهَلْ لَنَا مِنْ شُفَعَٓاءَ فَيَشْفَعُوا لَنَٓا اَوْ نُرَدُّ فَنَعْمَلَ غَيْرَ الَّذِى كُنَّا
نَعْمَلُۜ قَدْ خَسِرُٓوا اَنْفُسَهُمْ وَضَلَّ عَنْهُمْ مَا كَانُوا يَفْتَرُونَ ﴿٥٣﴾
اِنَّ رَبَّكُمُ اللّٰهُ الَّذِى خَلَقَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ فِى سِتَّةِ اَيَّامٍ
ثُمَّ اسْتَوٰى عَلَى الْعَرْشِ يُغْشِى الَّيْلَ النَّهَارَ يَطْلُبُهُ حَثِيثًاۙ
وَالشَّمْسَ وَالْقَمَرَ وَالنُّجُومَ مُسَخَّرَاتٍ بِاَمْرِهٖۜ اَلَا لَهُ الْخَلْقُ
وَالْاَمْرُۜ تَبَارَكَ اللّٰهُ رَبُّ الْعَالَمِينَ ﴿٥٤﴾ اُدْعُوا رَبَّكُمْ
تَضَرُّعًا وَخُفْيَةًۜ اِنَّهُ لَا يُحِبُّ الْمُعْتَدِينَۚ ﴿٥٥﴾ وَلَا تُفْسِدُوا فِى
الْاَرْضِ بَعْدَ اِصْلَاحِهَا وَادْعُوهُ خَوْفًا وَطَمَعًاۜ اِنَّ
رَحْمَتَ اللّٰهِ قَرِيبٌ مِنَ الْمُحْسِنِينَ ﴿٥٦﴾ وَهُوَ الَّذِى يُرْسِلُ
الرِّيَاحَ بُشْرًا بَيْنَ يَدَىْ رَحْمَتِهٖۜ حَتّٰٓى اِذَٓا اَقَلَّتْ سَحَابًا ثِقَالًا
سُقْنَاهُ لِبَلَدٍ مَيِّتٍ فَاَنْزَلْنَا بِهِ الْمَٓاءَ فَاَخْرَجْنَا بِهٖ مِنْ كُلِّ
الثَّمَرَاتِۜ كَذٰلِكَ نُخْرِجُ الْمَوْتٰى لَعَلَّكُمْ تَذَكَّرُونَ ﴿٥٧﴾

وَالْبَلَدُ

**52**- Bêguman me kitêbek (ku Quran e) ji wan re anî, me bi zanîn hukmên wê bi dorfirehî ji hev veqetandin. Ew ji bo miletekî ku bawerî bînin, serwextî û dilovanî ye.

**53**- (Lê belê ew îmanê nayînin) Ew her li benda hatina wî cezayî ne ku Quranê ew pê xeberdar kirine. Roja ku ew ceza bi ser wan de bê, ew ên ku (baweriyê û emelkirina bi hukmê şer‘ê) berê di paş guhê xwe re avêtibûn, dê bibêjin: Bêguman qasidên Xwedayê me bi gotina heq hatibûn. Ma gelo ji me re mehdervanin hene ku êdî mehderiya me bikin? Yan jî em (dîsa li dinyayê) bên vegerandin, vêca ji bilî ya ku me kirî, da ku em karekî (rindtir) bikin. Bêguman wan zerar li xwe kiriye û ew hêviyên ku li dinyayê ji pûtên xwe dikirin, ji ber wan winda bûne.

**54**- Bêguman Xwedayê we Ellah Teala ye, ew ê ku erd û asîman di şeş rojan de afirandin, paşê (bi awayekî layîqê xwe) li ser erş îstîwa kir, raserî bû. Şev û rojê bi hev dinixumîne, her du bi lez, li pey hev digerin. Roj û heyv û stêr li ber fermana xwe berdestbûyî afirandin. Agahdar bin! Afirandin û fermandayîn, her jê re ye. Ellah Teala (bi zatê xwe) pîrozdêrayî ye, bi xêr û bêr e, munezzeh e ku ew Perwerdegarê tevê alemê ye.

**55**- Bi dizî, bi zarezar û lakelak li ber Xwedayê xwe bigerin. Bêguman Xwedê ji sînorbihêran hez nake (sînorbihêr, ew ên ku zêde didine ber dua û dengê xwe gelekî bilind dikin).

**56**- Piştî çakkirina erdê (bi hatina pêxemberan û kirina taetê) xerabî û tevdanê li ser erdê mekin. Bi tirs û bi hêvî li ber Xwedayê xwe bigerin, bêguman rehma Xwedê nêzîkî qencîxwazan e.

**57**- Ew Xweda ye yê ku “Ba”yê bi mizgînberî li pêşiya rehma xwe (beriya baranê) dişîne. Heta ku ba wan ewrên (bi avê) bargiran hildigre û radike, em berê wan didine welatekî hişkehola, vêca em bi bayê (ji ewran) baranê dibarînin, vêca em bi wê avê mêweyên cur bi cur dertînin. Ha bi vî rengî, em ê miriyan jî (roja qiyametê ji gorên wan zindî) derînin. (Ev mînak me ji bo we anî) da ku hûn ji vê rewşê şîret bigirin (û bêne îmanê).

**58**- Welatê ku axa wî rind û pak e, bi destûra Xwedayê xwe giyayê xwe baş derdixe, yê ku axa wî pîs e, ji giyayê bêfeyde pê ve tiştekî din dernaxe. Bi vî awayî em ayetên xwe ji bo civateke ku şêkiriya Xwada dikin, ji hev diqetînin.

Ellah Teala, di vê ayeta pîroz de teşbîh kiriye; mirovê bawermend şibandiye welatê ku axa wî rind û pak e. Gava ew gotina heqiyê bibihîze, di cih de wê qebûl dike, jê îstîfade dike û ji wê kirinên çê û rindî xuya dibin. Mirovê zendîq û munafiq jî şibandiye welatê ku axa wî qels û pîs e. Gava ew gotina heqiyê bibihîze jî wê qebûl nake û ji wê kelk wernagire.

**59**- Sond be, Me Nûh bi pêxemberî ji qewmê wî re şand, got: Ey gelê min! Ellah Teala bihebînin. Ji wî pê ve tu Xweda ji we re nîn in. Bêguman ez li ser we ji ezabê rojeke mezin ditirsim.

**60**- Giregirên gelê wî got: Bêguman em te di nava rêşaşiyeke aşkera de dibînin!

**61**- Nûh (pêxember) got: Ey gelê min! Çu rêşaşî li dor min nîn e, lê belê ez qasidê Xwedayê alêmê me.

**62**- Ez wehya Xwedayê xwe ji we re radigihînim, ez şîretê li we dikim û ya ku ez ji cem Xwedê dizanim hûn nizanin.

**63**- Ma hûn şaş dimînin ku ji cem Xwedayê we li ser (zimanê) yekî ji we kitêbek ji bo we bê, da ku we (ji ezabê Xwedê) bitirsîne û da ku hûn (ji gunehkariyê) xwe biparêzin û da ku hûn bikevin ber dilovaniya Xwedê.

**64**- Vêca (piştî van şîretan) wan bi Nûh pêxember bawerî neanî, êdî me ew û yên ku di keştiyê de digel wî bûn

١٥٩ اَلْجُزْءُ الثَّامِنُ

وَالْبَلَدُ الطَّيِّبُ يَخْرُجُ نَبَاتُهُ بِاِذْنِ رَبِّهِ وَالَّذٖى خَبُثَ لَا يَخْرُجُ
اِلَّا نَكِدًا كَذٰلِكَ نُصَرِّفُ الْاٰيَاتِ لِقَوْمٍ يَشْكُرُونَ ٥٨
لَقَدْ اَرْسَلْنَا نُوحًا اِلٰى قَوْمِهٖ فَقَالَ يَا قَوْمِ اعْبُدُوا اللّٰهَ
مَا لَكُمْ مِنْ اِلٰهٍ غَيْرُهُ اِنّٖٓى اَخَافُ عَلَيْكُمْ عَذَابَ يَوْمٍ عَظٖيمٍ
٥٩ قَالَ الْمَلَاُ مِنْ قَوْمِهٖٓ اِنَّا لَنَرٰيكَ فٖى ضَلَالٍ مُبٖينٍ ٦٠ قَالَ
يَا قَوْمِ لَيْسَ بٖى ضَلَالَةٌ وَلٰكِنّٖى رَسُولٌ مِنْ رَبِّ الْعَالَمٖينَ ٦١
اُبَلِّغُكُمْ رِسَالَاتِ رَبّٖى وَاَنْصَحُ لَكُمْ وَاَعْلَمُ مِنَ اللّٰهِ مَا لَا
تَعْلَمُونَ ٦٢ اَوَعَجِبْتُمْ اَنْ جَٓاءَكُمْ ذِكْرٌ مِنْ رَبِّكُمْ عَلٰى
رَجُلٍ مِنْكُمْ لِيُنْذِرَكُمْ وَلِتَتَّقُوا وَلَعَلَّكُمْ تُرْحَمُونَ ٦٣
فَكَذَّبُوهُ فَاَنْجَيْنَاهُ وَالَّذٖينَ مَعَهُ فِى الْفُلْكِ وَاَغْرَقْنَا
الَّذٖينَ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا اِنَّهُمْ كَانُوا قَوْمًا عَمٖينَ ٦٤ وَاِلٰى عَادٍ
اَخَاهُمْ هُودًا قَالَ يَا قَوْمِ اعْبُدُوا اللّٰهَ مَا لَكُمْ مِنْ اِلٰهٍ غَيْرُهُ
اَفَلَا تَتَّقُونَ ٦٥ قَالَ الْمَلَاُ الَّذٖينَ كَفَرُوا مِنْ قَوْمِهٖٓ اِنَّا لَنَرٰيكَ
فٖى سَفَاهَةٍ وَاِنَّا لَنَظُنُّكَ مِنَ الْكَاذِبٖينَ ٦٦ قَالَ يَا قَوْمِ
لَيْسَ بٖى سَفَاهَةٌ وَلٰكِنّٖى رَسُولٌ مِنْ رَبِّ الْعَالَمٖينَ ٦٧

xelas kirin û yên ku bawerî bi ayetên me neanîn, me ew binav kirin! Bêguman ew qewmekî dilkor bûn (rastî nedidîtin).

**65**- Me, ji gelê Ad re jî, ji malbata wan Hûd (bi pêxemberî) şand, (Hûd pêxember) got: Ey gelê min! Ji Ellah Teala re evdîtiyê bikin, ji wî pê ve ji bo we tu Xweda tun in. Ma hê jî hûn ê xwe (ji ezabê wî) neparêzin?!

**66**- Ji gelê wî giregirên kafir gotin: Em te aqilsivik dibînin û bêguman em guman dikin ku tu teqez ji derewkeran î.

**67**- (Hûd pêxember) Got: Ey gelê min! Ez ne aqilsivik im. Lê belê ji aliyê Xwedayê alemê ve ez pêxemberek im ku hatime şandin.

أُبَلِّغُكُمْ رِسَالَاتِ رَبّٖى وَاَنَا لَكُمْ نَاصِحٌ اَمٖينٌ ﴿٦٨﴾
اَوَعَجِبْتُمْ اَنْ جَٓاءَكُمْ ذِكْرٌ مِنْ رَبِّكُمْ عَلٰى رَجُلٍ مِنْكُمْ
لِيُنْذِرَكُمْ وَاذْكُرُٓوا اِذْ جَعَلَكُمْ خُلَفَٓاءَ مِنْ بَعْدِ قَوْمِ نُوحٍ
وَزَادَكُمْ فِى الْخَلْقِ بَصْطَةً فَاذْكُرُٓوا اٰلَٓاءَ اللّٰهِ لَعَلَّكُمْ
تُفْلِحُونَ ﴿٦٩﴾ قَالُٓوا اَجِئْتَنَا لِنَعْبُدَ اللّٰهَ وَحْدَهُ وَنَذَرَ مَا كَانَ
يَعْبُدُ اٰبَٓاؤُنَا فَأْتِنَا بِمَا تَعِدُنَٓا اِنْ كُنْتَ مِنَ الصَّادِقٖينَ
﴿٧٠﴾ قَالَ قَدْ وَقَعَ عَلَيْكُمْ مِنْ رَبِّكُمْ رِجْسٌ وَغَضَبٌ
اَتُجَادِلُونَنٖى فٖٓى اَسْمَٓاءٍ سَمَّيْتُمُوهَٓا اَنْتُمْ وَاٰبَٓاؤُكُمْ
مَا نَزَّلَ اللّٰهُ بِهَا مِنْ سُلْطَانٍ فَانْتَظِرُٓوا اِنّٖى مَعَكُمْ
مِنَ الْمُنْتَظِرٖينَ ﴿٧١﴾ فَاَنْجَيْنَاهُ وَالَّذٖينَ مَعَهُ بِرَحْمَةٍ
مِنَّا وَقَطَعْنَا دَابِرَ الَّذٖينَ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا وَمَا كَانُوا
مُؤْمِنٖينَ ﴿٧٢﴾ وَاِلٰى ثَمُودَ اَخَاهُمْ صَالِحًا قَالَ يَا قَوْمِ
اعْبُدُوا اللّٰهَ مَا لَكُمْ مِنْ اِلٰهٍ غَيْرُهُ قَدْ جَٓاءَتْكُمْ بَيِّنَةٌ
مِنْ رَبِّكُمْ هٰذِهٖ نَاقَةُ اللّٰهِ لَكُمْ اٰيَةً فَذَرُوهَا تَأْكُلْ فٖٓى
اَرْضِ اللّٰهِ وَلَا تَمَسُّوهَا بِسُٓوءٍ فَيَأْخُذَكُمْ عَذَابٌ اَلٖيمٌ ﴿٧٣﴾

وَاذْكُرُوا

**68**- Ez peyama ku Xwedayê min ez pê şandime ji bo we radigihînim û ez ji bo we şîretkarekî pêbawer im.

**69**- Ma hûn şaş dimînin ku ji cem Xwedayê we, li ser (zimanê) yekî ji we, pend û şîret ji we re bên da ku we ji ezabê Xweda bitirsîne?! Bi bîr bînin, piştî helaka gelê Nûh ku hûn kirin şûngirên wan (û li ser zemînê hûn niştecî kirin) û ji aliyê rûh û bedenê ve hêz û quweta we zêde kir. Nexwe qenciya Xwedê bi bîr bînin da ku hûn (bi gihîştina daxwazê) serfiraz bibin.

**70**- Gotin: (Ey Hûd!) Erê ma tu ji bo me hatî ku em her ji Ellah Teala re îbadetê bikin û em dev ji yên ku bav û kalên me ji wan re îbadet kirin, berdin?! Vêca eger bera tu ji rastbêjan bî, de heydê ew ezabê ku tu me pê ditirsînî bi ser me de bîne.

**71**- (Hûd ji wan re) Got: Êdî ji Xwedayê we, ji we re ezab û xeşmek misoger bûye. Ma hûn bi min re nîqaşê dikin der heqê pûtên ku we û bav û kalên we gotin ew îlah in. Li ser vê yekê Xwedê tu belge jî danexistiye. Nexwe (li hatina ezabê) çavnêriyê bikin, bêguman ez jî bi we re çavnêriyê dikim!

**72**- Me bi dilovaniyeke ji cem xwe, Hûd pêxember û yên ku pê re bûn xelas kirin û me koka wan ên ku bi ayetên me bawerî neanîbûn ji binî ve birî.

**73**- Me ji (qewmê) Semûd re, ji malbata wan -bi pêxemberî - Salih (şand). Salih got: Ey gelê min! Ellah Teala bihebînin, jê re îbadetê bikin. Ji Xwedê Teala pêştir tu Xweda ji bo we nîn in. Ji cem Xwedayê we, ji we re nîşaneke (mucîzeyeke) aşkera hatiye ku ev deveya Xwedê ye, ji we re mucîzeyeke mezin e, dev jê berdin bila ji (çêra) erda Xwedê bixwe (û vexwe), zinhar azarê nedinê! Nexwe dê ezabekî bijan we bigire.

Gava Xwedê, ji qewmê Semûd re bi pêxemberî birayê wan Nebî Salih şand, jê re gotin: Heke bi rastî tu pêxember bî, li ber Xwedayê xwe bigere, bila ji vê lata hanê dondulekê (devehekê) derîne. Wê çaxê em dê bawer bikin ku tu bi rastî pêxamber î. Vêca Salih pêxember jî dua kir, weke daxwaza wan Xwedê Teala ji wê latê dondulek deranî. Gava qewmê Semûd ev mu'cizeya naçarhêl bi çavên xwe dîtin, hinekan ji wan bawerî anî û ewên din jî li ser kufra xwe man. Salih (s) şîret li gelê xwe kir û ji wan re got: Bi neqenciyê dest neavêjinê, bila bi serbestî li erda Xwedê çêreya xwe bixwe û ava xwe vexwe û li serer dê bigere; lêbelê wan lingên dondulê şikandin û ew kuştin. Ji ber vê yekê Salih pêxember ji herêma xwe hicret kir û gelê wî jî bi ezabekî dijwar helak bû û kete kewaşegeha dîrokê.

وَاذْكُرُٓوا اِذْ جَعَلَكُمْ خُلَفَٓاءَ مِنْ بَعْدِ عَادٍ وَبَوَّاَكُمْ
فِى الْاَرْضِ تَتَّخِذُونَ مِنْ سُهُولِهَا قُصُورًا وَتَنْحِتُونَ
الْجِبَالَ بُيُوتًا فَاذْكُرُٓوا اٰلَٓاءَ اللّٰهِ وَلَا تَعْثَوْا فِى الْاَرْضِ
مُفْسِدِينَ ﴿٧٤﴾ قَالَ الْمَلَاُ الَّذِينَ اسْتَكْبَرُوا مِنْ قَوْمِهِ
لِلَّذِينَ اسْتُضْعِفُوا لِمَنْ اٰمَنَ مِنْهُمْ اَتَعْلَمُونَ اَنَّ صَالِحًا
مُرْسَلٌ مِنْ رَبِّهِ قَالُٓوا اِنَّا بِمَٓا اُرْسِلَ بِهِ مُؤْمِنُونَ ﴿٧٥﴾
قَالَ الَّذِينَ اسْتَكْبَرُٓوا اِنَّا بِالَّذِٓى اٰمَنْتُمْ بِهِ كَافِرُونَ ﴿٧٦﴾
فَعَقَرُوا النَّاقَةَ وَعَتَوْا عَنْ اَمْرِ رَبِّهِمْ وَقَالُوا يَا صَالِحُ
ائْتِنَا بِمَا تَعِدُنَٓا اِنْ كُنْتَ مِنَ الْمُرْسَلِينَ ﴿٧٧﴾ فَاَخَذَتْهُمُ
الرَّجْفَةُ فَاَصْبَحُوا فِى دَارِهِمْ جَاثِمِينَ ﴿٧٨﴾ فَتَوَلّٰى عَنْهُمْ
وَقَالَ يَا قَوْمِ لَقَدْ اَبْلَغْتُكُمْ رِسَالَةَ رَبِّى وَنَصَحْتُ
لَكُمْ وَلٰكِنْ لَا تُحِبُّونَ النَّاصِحِينَ ﴿٧٩﴾ وَلُوطًا اِذْ
قَالَ لِقَوْمِهِٓ اَتَأْتُونَ الْفَاحِشَةَ مَا سَبَقَكُمْ بِهَا مِنْ
اَحَدٍ مِنَ الْعَالَمِينَ ﴿٨٠﴾ اِنَّكُمْ لَتَأْتُونَ الرِّجَالَ
شَهْوَةً مِنْ دُونِ النِّسَٓاءِ بَلْ اَنْتُمْ قَوْمٌ مُسْرِفُونَ ﴿٨١﴾

**74**- Bi bîr bînin dema piştî (helaka qewmê) Ad, me hûn kirin şûngirên wan û me li ser rûyê erdê hûn bi cih kirin ku we li deştên wê koşk lêdikirin û we çiya dikolan dikirine xanî. Êdî gencîneyên Xwedê bînin hişê xwe û li ser erdê fesadiyê dernexin.

**75**- Giregirên gelê wî ew ên ku xwe mezin didêran, ji yên tepeserbûyî re ew ên ku wan bawerî anîbû, gotin: Ma hûn li zanîna xwe siwar in ku Salih ji cem Xwedayê xwe ve (bi pêxemberî) hatiye hinartin? Wan jî digot: (Erê), Bêguman em bi peyxama ku ew pê hatiye şandin, bawer in.

**76**- Ew ên ku xwe mezin didêran digotin: Bêguman ew peyxama ku we pê bawerî aniye, em pê nebawer in.

**77**- Vêca deve şerjê kirin û ji fermana Xwedayê xwe derketin û gotin: Ey Salih! Eger bi rastî tu pêxember î, de ka wî ezabê ku te em pê ditirsandin bi ser me de bîne!

**78**- Vêca wê erdheja dijwar ew hingaftin, êdî ew di xaniyên xwe de li ser çokên xwe mirî û bêbizav man.

**79**- Wê demê Salih pêxember berê xwe ji wan vegerand û got: Ey gelê min! Sond be ku min peyama Xwedayê xwe ji we re ragihand û min şîret li we kir, lê belê hûn ji şîretkeran hez nakin.

**80**- Wê demê Lût pêxember ji gelê xwe re got: Ma ew fehşîtiya ku beriya we tu gelan ew nekiribû, hûn çawa wê dikin?

**81**- Hûn jinan dihêlin û bi dilbijênî bi mêran re radizin. (Ev bizaveke kirêt e) belkî hûn civateke serxweveçûyî ne.

Lût Pêxember, neviyê birayê Îbrahîm e. Li Humusê bi navê Sedom bajarek hebû, ji xelkê wê re bi pêxamberî hatibû hinartin. Xelkê Sedomê tiştekî wisa dilxelên dikir ku tu milletan ew fêla kirêt nedikir. Wan têkiliya hevzayendî (homoseksuelî) dikir. Hîç guhên xwe nedan pend û şîretên Lût û fêla xwe ya dilxelên û rûqermiçên berdewam kirin. Dawiyê Lût û mirovên ku bi wî îman anîbûn, bi şev ji Sedomê derhatin û li ser gelê wî, ji jor ve kevir bariyan û bi zelzeleyeke dijwar helak bûn û çûn. Bi vî awayê xemnak encam li fuhûşê, nankoriyê, kufrê û çavsoriyan hat.

وَمَا كَانَ جَوَابَ قَوْمِهِ إِلَّا أَنْ قَالُوا أَخْرِجُوهُمْ
مِنْ قَرْيَتِكُمْ إِنَّهُمْ أُنَاسٌ يَتَطَهَّرُونَ ﴿٨٢﴾ فَأَنْجَيْنَاهُ وَأَهْلَهُ
إِلَّا امْرَأَتَهُ كَانَتْ مِنَ الْغَابِرِينَ ﴿٨٣﴾ وَأَمْطَرْنَا عَلَيْهِمْ
مَطَرًا فَانْظُرْ كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ الْمُجْرِمِينَ ﴿٨٤﴾ وَإِلَى
مَدْيَنَ أَخَاهُمْ شُعَيْبًا قَالَ يَا قَوْمِ اعْبُدُوا اللَّهَ مَا
لَكُمْ مِنْ إِلَهٍ غَيْرُهُ قَدْ جَاءَتْكُمْ بَيِّنَةٌ مِنْ رَبِّكُمْ
فَأَوْفُوا الْكَيْلَ وَالْمِيزَانَ وَلَا تَبْخَسُوا النَّاسَ
أَشْيَاءَهُمْ وَلَا تُفْسِدُوا فِي الْأَرْضِ بَعْدَ إِصْلَاحِهَا
ذَلِكُمْ خَيْرٌ لَكُمْ إِنْ كُنْتُمْ مُؤْمِنِينَ ﴿٨٥﴾ وَلَا
تَقْعُدُوا بِكُلِّ صِرَاطٍ تُوعِدُونَ وَتَصُدُّونَ عَنْ
سَبِيلِ اللَّهِ مَنْ آمَنَ بِهِ وَتَبْغُونَهَا عِوَجًا وَاذْكُرُوا
إِذْ كُنْتُمْ قَلِيلًا فَكَثَّرَكُمْ وَانْظُرُوا كَيْفَ كَانَ
عَاقِبَةُ الْمُفْسِدِينَ ﴿٨٦﴾ وَإِنْ كَانَ طَائِفَةٌ مِنْكُمْ آمَنُوا
بِالَّذِي أُرْسِلْتُ بِهِ وَطَائِفَةٌ لَمْ يُؤْمِنُوا فَاصْبِرُوا
حَتَّى يَحْكُمَ اللَّهُ بَيْنَنَا وَهُوَ خَيْرُ الْحَاكِمِينَ ﴿٨٧﴾
قَالَ

**82**- Bersiva gelê Lût her ev bû; ji hev re gotin: Wan (Lût û peyrewên wî) ji welatê xwe derînin. Bêguman ew mirovinên ku xwe (ji lîwatê) pak didêrin.

**83**- Vêca me Lût pêxember û mirovên wî (yên bawerî pê anîn) rizgar kirin, ji bilî jina wî, lewra ew ji yên helakbûyî bû.

Mebest ji malbata wî ew kes in ku bawerî bi Lût anîbûn û pê re beşdarî têkoşîna ehlê yekdêrînê ya li hemberî muşrikiyê bûne.

**84**- Me kevir (ên sincirî) bi ser wan de barandin. Vêca de binêre ka encama gunehkaran çawa bû!

Ji vir û pê de behsa têkoşîna Şu'eyb Pêxemberî dike ku li dijî neqenciyên gelê xwe kiriye.

**85**- Me ji (gelê) Medyenê re jî, ji malbata wan (bi pêxemberî) Şu'eyb şand. (ji wan re) got: Ey gelê min! Tenê ji bo Ellah Teala îbadetê bikin, ji wî pê ve tu xweda ji bo we nîn in. Bêguman ji cem Xwedayê we ji bo we delîleke (mucîzeyeke) aşkera hatiye. Êdî heqê kêşan û pîvanê bidinê û tiştên mirovan bi kêmasî nedin wan. Piştî çaksaziya erdê (ku bi şerî'eta pêxemberan çaksaz bûbû, bi kufr û zilmê) tê de xerabiyê nekin. Ev ji we re çêtir e eger bi rastî hûn bawermend in.

Medyen navê kurê Îbrahîm e. Ji neviyên vî re êla Medyen û ji bajarê wan re jî Medyen hatiye gotin. Ev bajar li navbera Filistîn û Hîcazê li keviya Deryaya Sor bû.

**86**- Li ser her riyê rûnenin ku hûn mirovan (bi sedema ku malê xwe nadin we, bi kuştinê) bitirsînin û ku hûn berê ên ku wan bawerî bi Xwedê anîn ji riya (dînê) wî vegerînin û ku hûn bixwazin riya Xwedê çewt û xwar nîşan bidin. Wê demê hûn hindik bûn, vêca Xwedê hûn pir kirin. De binêrin ka encama fesadan çawa bûye!

**87**- Eger hin ji we, bi wehya ku ez bi pêxemberî pê hatime şandin îmanê bînin û hin ji we neyînin, vêca xwe ragirin heta ku Xwedê di navbera me de ferman bike (ku mumînan serkeftî û kafiran helak bike). Bêguman Xwedê Teala çêtirînê hukimdaran e.

**88**- Giregirên gelê wî yên ku xwe ji baweriya bi Xwedê mezin didêran, gotin: Ey Şu'eyb! Sond be em ê te û wan ên ku wan digel te bawerî anî ji welatê xwe derînin an jî hûn ê vegerin ser dînê me. (Şu'eyb bi sosretmayî) Got: Ma eger em ji dînê we bêzar bin jî (hûn ê dîsa têkilî me bibin)?

**89**- (Sond be!) Eger em dîsa vegerin ser dînê we, piştî ku Xwedê Teala em ji dînê we rizgar kirin, wê demê teqez li ser (navê) Xwedê me neweyî kiriye. Ji bilî ku Xwedayê me bivê -ew cuda ye- ji me re ne rewa ye ku em vegerin ser dînê we. Xwedayê me bi zanîna xwe dor li her tiştî girtiye. Me her xwe spartiye Xwedê. Xwedêyo, di navbera me û gelê me de (di wî tiştê ku em tê de têkoşînê bi hev re dikin) bi edaletî hukim bike (rastiya wê derêxe holê). Teqez Tu çêtirînê hukimdaran î.

**90**- Ji qewmê nebî Şu'eyb, wan giregirên ku kafir bûn (wiha) digot: Sond be, (ey gelê me) eger hûn bibine peyrewê Şu'eyb bêguman hûn ê zerar bikin.

**91**- Êdî (piştî van şîretan) wê erdheja dijwar ew hingaftin, vêca ew di malên xwe de li ser qelevîskan mirî man (helak bûn û ji navê çûn).

**92**- Ew ên ku bi Şu'eyb pêxember bawerî neanîbûn, (wisa koka wan hatibû birîn) her wekî ew di vî gundî de nebûn û tê de nejiyabûn, ew ên ku wan bi Şu'eyb bawerî neanîbûn, her ew bi xwe ne yên ku zerar kiribûn.

**93**- (Şu'eyb) Berê xwe ji wan guherand û got: Ey gelê min! Min peyamên Xwedayê xwe ji we re ragihandin û min pend û şîret li we kirin, êdî ez ê çawa ji bo qewmekî kafir xemgîn bibim (ku ew ne hêja ne mirov li ber wan bikeve û xema wan bixwe).

اَلْجُزْءُ التَّاسِعُ ١٦٣

قَالَ الْمَلَأُ الَّذِينَ اسْتَكْبَرُوا مِنْ قَوْمِهِ لَنُخْرِجَنَّكَ يَا شُعَيْبُ
وَالَّذِينَ اٰمَنُوا مَعَكَ مِنْ قَرْيَتِنَا اَوْ لَتَعُودُنَّ فِي مِلَّتِنَا قَالَ
اَوَلَوْ كُنَّا كَارِهِينَ ﴿٨٨﴾ قَدِ افْتَرَيْنَا عَلَى اللّٰهِ كَذِبًا اِنْ عُدْنَا
فِي مِلَّتِكُمْ بَعْدَ اِذْ نَجّٰينَا اللّٰهُ مِنْهَا وَمَا يَكُونُ لَنَا اَنْ نَعُودَ فِيهَا
اِلَّا اَنْ يَشَاءَ اللّٰهُ رَبُّنَا وَسِعَ رَبُّنَا كُلَّ شَيْءٍ عِلْمًا عَلَى اللّٰهِ تَوَكَّلْنَا
رَبَّنَا افْتَحْ بَيْنَنَا وَبَيْنَ قَوْمِنَا بِالْحَقِّ وَاَنْتَ خَيْرُ الْفَاتِحِينَ
﴿٨٩﴾ وَقَالَ الْمَلَأُ الَّذِينَ كَفَرُوا مِنْ قَوْمِهِ لَئِنِ اتَّبَعْتُمْ شُعَيْبًا
اِنَّكُمْ اِذًا لَخَاسِرُونَ ﴿٩٠﴾ فَاَخَذَتْهُمُ الرَّجْفَةُ فَاَصْبَحُوا فِي دَارِهِمْ
جَاثِمِينَ ﴿٩١﴾ اَلَّذِينَ كَذَّبُوا شُعَيْبًا كَاَنْ لَمْ يَغْنَوْا فِيهَا اَلَّذِينَ كَذَّبُوا
شُعَيْبًا كَانُوا هُمُ الْخَاسِرِينَ ﴿٩٢﴾ فَتَوَلّٰى عَنْهُمْ وَقَالَ يَا قَوْمِ
لَقَدْ اَبْلَغْتُكُمْ رِسَالَاتِ رَبِّي وَنَصَحْتُ لَكُمْ فَكَيْفَ
اٰسٰى عَلٰى قَوْمٍ كَافِرِينَ ﴿٩٣﴾ وَمَا اَرْسَلْنَا فِي قَرْيَةٍ مِنْ نَبِيٍّ اِلَّا
اَخَذْنَا اَهْلَهَا بِالْبَاْسَاءِ وَالضَّرَّاءِ لَعَلَّهُمْ يَضَّرَّعُونَ ﴿٩٤﴾ ثُمَّ
بَدَّلْنَا مَكَانَ السَّيِّئَةِ الْحَسَنَةَ حَتّٰى عَفَوْا وَقَالُوا قَدْ مَسَّ
اٰبَاءَنَا الضَّرَّاءُ وَالسَّرَّاءُ فَاَخَذْنَاهُمْ بَغْتَةً وَهُمْ لَا يَشْعُرُونَ ﴿٩٥﴾

**94**- Me her çiqas ji welatekî re pêxemberek şandibe (ku ferman û qedexeyên min ji wan re bibêjin, vêca wextê bi ya wan nekirin) Me her ew rûbirûyî xizanî û nexweşiyê kirin, da ku bi zarezar li ber me bigerin (û ji wan kirinên xwe poşman bibin).

**95**- Paşê (me timtêla wan guherand), Me di şûna neqenciyê (xizanî û nexweşiyê) de qencî (zengînî û tenduristî) da wan, heta ku (aboriya wan zêde bû û di xweşdayîna Xwedê de noq bûn û bi hejmara xwe) pir bûn. Vêca gotin: Teqez ev xizanî û nexweşî wisa dest avêtibû bav û kalên me jî (wan jî ev rojên teng û fireh dîtibûn, nexwe ev adetekî demê ye, ne ku cezayekî îlahî ye). Êdî demeke ku haya wan qet ji wan nemabû, me jî ew ji nişka ve (bi ezabê) hingaftin.

وَلَوْ اَنَّ اَهْلَ الْقُرٰٓى اٰمَنُوا وَاتَّقَوْا لَفَتَحْنَا عَلَيْهِمْ بَرَكَاتٍ
مِنَ السَّمَٓاءِ وَالْاَرْضِ وَلٰكِنْ كَذَّبُوا فَاَخَذْنَاهُمْ بِمَا كَانُوا
يَكْسِبُونَ ﴿٩٦﴾ اَفَاَمِنَ اَهْلُ الْقُرٰٓى اَنْ يَاْتِيَهُمْ بَاْسُنَا بَيَاتًا
وَهُمْ نَٓائِمُونَ ﴿٩٧﴾ اَوَاَمِنَ اَهْلُ الْقُرٰٓى اَنْ يَاْتِيَهُمْ بَاْسُنَا
ضُحًى وَهُمْ يَلْعَبُونَ ﴿٩٨﴾ اَفَاَمِنُوا مَكْرَ اللّٰهِ فَلَا يَاْمَنُ
مَكْرَ اللّٰهِ اِلَّا الْقَوْمُ الْخَاسِرُونَ ﴿٩٩﴾ اَوَلَمْ يَهْدِ لِلَّذ۪ينَ
يَرِثُونَ الْاَرْضَ مِنْ بَعْدِ اَهْلِهَٓا اَنْ لَوْ نَشَٓاءُ اَصَبْنَاهُمْ
بِذُنُوبِهِمْ وَنَطْبَعُ عَلٰى قُلُوبِهِمْ فَهُمْ لَا يَسْمَعُونَ ﴿١٠٠﴾ تِلْكَ
الْقُرٰى نَقُصُّ عَلَيْكَ مِنْ اَنْبَٓائِهَا وَلَقَدْ جَٓاءَتْهُمْ رُسُلُهُمْ
بِالْبَيِّنَاتِ فَمَا كَانُوا لِيُؤْمِنُوا بِمَا كَذَّبُوا مِنْ قَبْلُ
كَذٰلِكَ يَطْبَعُ اللّٰهُ عَلٰى قُلُوبِ الْكَافِر۪ينَ ﴿١٠١﴾ وَمَا وَجَدْنَا
لِاَكْثَرِهِمْ مِنْ عَهْدٍ وَاِنْ وَجَدْنَٓا اَكْثَرَهُمْ لَفَاسِق۪ينَ ﴿١٠٢﴾
ثُمَّ بَعَثْنَا مِنْ بَعْدِهِمْ مُوسٰى بِاٰيَاتِنَٓا اِلٰى فِرْعَوْنَ وَمَلَا۬ئِه۪
فَظَلَمُوا بِهَا فَانْظُرْ كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ الْمُفْسِد۪ينَ ﴿١٠٣﴾ وَقَالَ
مُوسٰى يَا فِرْعَوْنُ اِنّ۪ي رَسُولٌ مِنْ رَبِّ الْعَالَم۪ينَ ﴿١٠٤﴾

حَق۪يقٌ

**96**- Bêguman eger xelkên van gundên hanê îman bianiya û hay ji ferman û qedexeyên Xwedê bimana, helbet me dê ji wan re (deriyên) xêrê ji erd û asîmanan vekirina. Lê belê wan (bi pêxemberên me) bawerî neanî, vêca bi sedema neqenciya ku bi dest xwe ve anîbûn, me jî bi ezab ew dan cezakirin.

**97**- Êdî ma gelo xelkên wan gundan ji xwe ewle ne, dema ew bi şev raketî bin ku ezabê me bi ser wan de neyê?

**98**- Yan ma xelkê wan gundan, di danê taştê de ku bi karê bêhavil dadikevin, ji xwe ewle ne ku ezabê me ji wan re neyê?

**99**- Ma ew ji dehfika Xwedê Teala (ku pêşî muhletê dide û paşê ji nişka ve wan ceza dike) piştrast bûne? Vêca ji civata yên xesirîn pê ve, ji dehfika Xwedê Teala tu kes xwe piştrast (ewle) nabîne.

**100**- Qey hê jî (ew cezayê ku bi serê wan ên borî de hatibû) ne bûye delîl û şiyarî ji bo wan ên ku bûne wêrtê erdê piştî helakbûna xelkê wê (ku ew jî di rêça wan de diçin). (Hîn ew nizanin) eger em bivên, em dikarin bi sedema gunehên wan, wan bi xwe jî ceza bikin û ser dilê wan mor bikin, êdî ew dê rastiyê nebihîzin.

**101**- (Resûlê min!) Ew gundên (ku behsa wan borî, ji qewmê Nûh bigire heta qewmê Şu'eyb pêxember) ku em ji te re hin rûdanên wan radigihînin (ka çi bi serê wan de hat û aqîbeta wan bû çi?) Bêguman pêxemberên wan bi mucîze û nîşanên aşkera bi bal wan ve hatin. Lê belê ew ne kesinên wisa bûn ku bi wan rastiyên ku berê înkar kiribûn, bawerî bînin. Ha bi vî rengî Xwedê Teala dilê kafiran mor dike.

**102**- Me pirên wan (umetên berê) dîtin ku ew ne li ser soz û peymana xwe bûn, digel ku me pirên wan jî dît ku her jirêderketî bûn.

**103**- Piştî wan (pêxemberên ku behsa wan derbas bû), me Mûsa bi mucîze û ayetên xwe bi bal Firewn û civata wî ve şand, vêca wan bawerî pê neanî, de êdî binêre ka dûmahîka xerabkeran bû çi?!

**104**- Mûsa got: Ey Firewn! Bêguman ez pêxemberê Xwedayê hemû cîhaniyan im (ku bi bal we ve hatime şandin).

حَقٖيقٌ عَلٰٓى اَنْ لَٓا اَقُولَ عَلَى اللّٰهِ اِلَّا الْحَقَّۜ قَدْ جِئْتُكُمْ
بِبَيِّنَةٍ مِنْ رَبِّكُمْ فَاَرْسِلْ مَعِيَ بَنٖٓي اِسْرَٓائٖلَۜ ﴿١٠٥﴾ قَالَ اِنْ
كُنْتَ جِئْتَ بِاٰيَةٍ فَأْتِ بِهَٓا اِنْ كُنْتَ مِنَ الصَّادِقٖينَ ﴿١٠٦﴾
فَاَلْقٰى عَصَاهُ فَاِذَا هِيَ ثُعْبَانٌ مُبٖينٌۚ ﴿١٠٧﴾ وَنَزَعَ يَدَهُ فَاِذَا هِيَ
بَيْضَٓاءُ لِلنَّاظِرٖينَ ﴿١٠٨﴾ قَالَ الْمَلَاُ مِنْ قَوْمِ فِرْعَوْنَ اِنَّ هٰذَا
لَسَاحِرٌ عَلٖيمٌۙ ﴿١٠٩﴾ يُرٖيدُ اَنْ يُخْرِجَكُمْ مِنْ اَرْضِكُمْۚ فَمَاذَا
تَأْمُرُونَ ﴿١١٠﴾ قَالُٓوا اَرْجِهْ وَاَخَاهُ وَاَرْسِلْ فِي الْمَدَٓائِنِ حَاشِرٖينَۙ
﴿١١١﴾ يَأْتُوكَ بِكُلِّ سَاحِرٍ عَلٖيمٍ ﴿١١٢﴾ وَجَٓاءَ السَّحَرَةُ فِرْعَوْنَ
قَالُٓوا اِنَّ لَنَا لَاَجْرًا اِنْ كُنَّا نَحْنُ الْغَالِبٖينَ ﴿١١٣﴾ قَالَ
نَعَمْ وَاِنَّكُمْ لَمِنَ الْمُقَرَّبٖينَ ﴿١١٤﴾ قَالُوا يَا مُوسٰٓى اِمَّٓا اَنْ تُلْقِيَ
وَاِمَّٓا اَنْ نَكُونَ نَحْنُ الْمُلْقٖينَ ﴿١١٥﴾ قَالَ اَلْقُواۚ فَلَمَّٓا اَلْقَوْا سَحَرُٓوا
اَعْيُنَ النَّاسِ وَاسْتَرْهَبُوهُمْ وَجَٓاؤُ۫ بِسِحْرٍ عَظٖيمٍ ﴿١١٦﴾
وَاَوْحَيْنَٓا اِلٰى مُوسٰٓى اَنْ اَلْقِ عَصَاكَۚ فَاِذَا هِيَ تَلْقَفُ
مَا يَأْفِكُونَۚ ﴿١١٧﴾ فَوَقَعَ الْحَقُّ وَبَطَلَ مَا كَانُوا يَعْمَلُونَۚ ﴿١١٨﴾ فَغُلِبُوا
هُنَالِكَ وَانْقَلَبُوا صَاغِرٖينَۚ ﴿١١٩﴾ وَاُلْقِيَ السَّحَرَةُ سَاجِدٖينَۚ ﴿١٢٠﴾

**105**- Pêdivî ye li ser min ku li ser navê Xwedê Teala ji rastî û heqiyê pê ve ez tiştekî dîtir nebêjim. Bêguman min ji cem Xwedayê we mucîze û nîşanên aşkera ji we re anîne, vêca îsraîliyan serbest berde û digel min bişîne (da ku ji Misrê derkevin û herin Qudsê).

**106**- (Firewnî ji Mûsa re) Got: Eger bi rastî tu bi mucîzeyekê hatibî ka bîne, eger bi rastî tu ji rastbêjan bî.

**107**- Vêca Mûsa darê xwe avêt, di wê demê de darê wî li ber çavan bû zehayekî maran.

**108**- Destê xwe jî (ji paxila xwe) derxist, ji nişka ve ew jî ji temaşekeran re spî û nûranî bû.

**109**- Giregirên qewmê Firewn got: Bêguman ev sêrbazekî pir zana ye.

**110**- Ew dixwaze (bi sêrbaziya xwe) we ji welatê we derîne, vêca ka hûn çi dibêjin (û ka çi fermanê didin)?

**111**- (Civata Firewn jê re) Gotin: Mûsa û birayê wî bi hêvîdarî bide mijûlkirin û civînkaran bişîne welatan.

**112**- Bila hemû sêrbazên zana ji te re bînin.

**113**- (Şande dûv hemû sêrbazan) vêca dema sêrbaz hatin cem Firewn, wan got: Eger em serkeftî bibin, ma ji me re xelateke vebirî heye?

**114**- (Firewnî ji wan re) Got: Belê, bêguman hûn ê bibin ji yên nêzîkê min.

**115**- (Sêrbazan) Gotin: Ey Mûsa! Ma tu dê (pêşî darê xwe) biavêjî, yan em ê pêşî (tiştên digel xwe) biavêjin holê?

**116**- (Mûsa ji wan re) Got: Hûn pêşî (hunerên xwe) biavêjin holê. Çi dema wan (hunerên xwe) avêtin, sêr li çavên xelkê kirin û ew tirsandin û sêrbaziyeke mezin anîne meydanê (xelkê hizir kir ku ew mar ên bera ne, ne ku sêrbazî ye).

Cadûyan werîs û parçeyên daran avêtin meydanê. Lêbelê ji ber ku sêhr li çavên xelkê kiribûn ji wan re wekî ku mar bin, dihatin dîtin.

**117**- Me jî peyxam ji Mûsa re şand (me jê re got:) gopalê xwe biavêje! (Vêca dema Mûsa gopalê xwe avêt), darê Mûsa, werîs û darên wan bi yek carê dabelandin.

**118**- Vêca rastî derkete holê û karê (sêrbaziya) ku wan kir, pûç bû.

**119**- Li wê derê (sêrbaz) şikestin û (Firewn û bereka xwe) rezîl û riswa vegeriyan.

**120**- Sêrbaz jî ser rû ketin, ji Xwedê Teala re secde birin.

قَالُوا اٰمَنَّا بِرَبِّ الْعَالَم۪ينَۙ ﴿١٢١﴾ رَبِّ مُوسٰى وَهٰرُونَ ﴿١٢٢﴾ قَالَ
فِرْعَوْنُ اٰمَنْتُمْ بِه۪ قَبْلَ اَنْ اٰذَنَ لَكُمْۚ اِنَّ هٰذَا لَمَكْرٌ مَكَرْتُمُوهُ
فِي الْمَد۪ينَةِ لِتُخْرِجُوا مِنْهَٓا اَهْلَهَاۚ فَسَوْفَ تَعْلَمُونَ ﴿١٢٣﴾
لَاُقَطِّعَنَّ اَيْدِيَكُمْ وَاَرْجُلَكُمْ مِنْ خِلَافٍ ثُمَّ لَاُصَلِّبَنَّكُمْ
اَجْمَع۪ينَ ﴿١٢٤﴾ قَالُٓوا اِنَّٓا اِلٰى رَبِّنَا مُنْقَلِبُونَۚ ﴿١٢٥﴾ وَمَا تَنْقِمُ
مِنَّٓا اِلَّٓا اَنْ اٰمَنَّا بِاٰيَاتِ رَبِّنَا لَمَّا جَٓاءَتْنَاۜ رَبَّنَٓا اَفْرِغْ عَلَيْنَا
صَبْرًا وَتَوَفَّنَا مُسْلِم۪ينَۚ ﴿١٢٦﴾ وَقَالَ الْمَلَاُ مِنْ قَوْمِ فِرْعَوْنَ اَتَذَرُ
مُوسٰى وَقَوْمَهُ لِيُفْسِدُوا فِي الْاَرْضِ وَيَذَرَكَ وَاٰلِهَتَكَۜ قَالَ
سَنُقَتِّلُ اَبْنَٓاءَهُمْ وَنَسْتَحْي۪ نِسَٓاءَهُمْۚ وَاِنَّا فَوْقَهُمْ قَاهِرُونَ
﴿١٢٧﴾ قَالَ مُوسٰى لِقَوْمِهِ اسْتَع۪ينُوا بِاللّٰهِ وَاصْبِرُواۚ اِنَّ الْاَرْضَ
لِلّٰهِۚ يُورِثُهَا مَنْ يَشَٓاءُ مِنْ عِبَادِه۪ۜ وَالْعَاقِبَةُ لِلْمُتَّق۪ينَ ﴿١٢٨﴾
قَالُٓوا اُو۫ذ۪ينَا مِنْ قَبْلِ اَنْ تَأْت۪يَنَا وَمِنْ بَعْدِ مَا جِئْتَنَاۜ قَالَ
عَسٰى رَبُّكُمْ اَنْ يُهْلِكَ عَدُوَّكُمْ وَيَسْتَخْلِفَكُمْ فِي الْاَرْضِ
فَيَنْظُرَ كَيْفَ تَعْمَلُونَ ﴿١٢٩﴾ وَلَقَدْ اَخَذْنَٓا اٰلَ فِرْعَوْنَ
بِالسِّن۪ينَ وَنَقْصٍ مِنَ الثَّمَرَاتِ لَعَلَّهُمْ يَذَّكَّرُونَ ﴿١٣٠﴾

فَاِذَا

**121**- Û gotin: Me bawerî bi Xwedayê alemê anî.

**122**- (Ku Ew) Xwedayê Mûsa û Harûn e.

**123**- Firewn, (ji wan re) got: Ma beriya ku ez destûra we bidim we bawerî pê anî? Qet guman tune ye ku ev fendek e we li welatê (Misrê) çêkiriye da ku hûn xelkê wê (qibtiyan) jê bixin der. Lê belê hûn ê paşê bizanin (ka ez ê çi bînim serê we).

**124**- Sond be ku ez ê bi rastî dest û piyên we ji çeprast ve jê bikim, piştre jî ez ê we hemûyan (bi daran ve) daleqînim.

**125**-(Sêrbazan) Gotin: (Ne xema me ye) Bêguman em ê bi bal Xwedayê xwe ve vegerin.

**126**- Her ji ber ku dema ayetên Xwedayê me ji me re hatin ku me bawerî bi nîşan û ayetên (mûcizeyên) Xwedê aniye tu me eybdar dikî. Xwedêyo, sebrê bi ser me de birijîne, me ragire û me misliman bimirîne.

**127**- Giregirên qewmê Firewn jê re gotin: Ma tu dê Mûsa û gelê wî (serbest) bihêlî da ku li ser erdê tevdanê bikin û pişta xwe bidin te û xwedayên te? (Firewn) got: Em ê kurên (zilamên) wan bikujin û keçên wan jî (ji bo xizmetê) sax bihêlin û bêguman em serdestî wan in û ew ji me re bindest in.

Di ayeta pîroz de “pişta xwe bidin te û xwedayên te” buhurî. Mexsed pê ev e: Li gorî rîwayetan Firewn, ji îsraîliyan re hin pûtên piçûk çikandibûn, wan jî perestina wan dikirin. Ji wan re wiha digot: Ez, hem rebbê we me, hem jî rebbê van pûta me.

**128**- Mûsa ji gelê xwe re got: Pişta xwe bi Xwedê Teala girêbidin, arîkariyê jê bixwazin, bêhna xwe fireh bikin û sebrê bikêşin. Bêguman erd tev a Xwedê Teala ye. Ji evdên xwe ew kê bivê wî dike mîratgirê erdê. Dûmahîk ji teqwadaran re ye.

**129**- (Gelê Mûsa jê re) Gotin: Beriya ku tu (bi pêxemberî) ji me re werî, em dihatin êşandin û piştî ku tu hatî jî em tên êşandin. (Mûsa ji wan re) Got: Hêvî heye ku Xwedayê we dijminê we ji holê rake; wan helak bike û we li ser erdê (li şûna wan) bike desthilat. Vêca dê binêre ka hûn ê çi bikin (gelo hûn ê wî bişêkirînin an jî hûn ê nankoriyê bikin)?

**130**- Sond be, Me Firewn û malbata wî bi xela û kêmkirina fêkî ceza kir da ku ji xwe re ders bigirin (û bêne îmanê).

فَاِذَا جَٓاءَتْهُمُ الْحَسَنَةُ قَالُوا لَنَا هٰذِهٖۚ وَاِنْ تُصِبْهُمْ سَيِّئَةٌ
يَطَّيَّرُوا بِمُوسٰى وَمَنْ مَعَهُۜ اَلَٓا اِنَّمَا طَٓائِرُهُمْ عِنْدَ اللّٰهِ
وَلٰكِنَّ اَكْثَرَهُمْ لَا يَعْلَمُونَ ﴿١٣١﴾ وَقَالُوا مَهْمَا تَأْتِنَا بِهٖ
مِنْ اٰيَةٍ لِتَسْحَرَنَا بِهَاۙ فَمَا نَحْنُ لَكَ بِمُؤْمِنٖينَ ﴿١٣٢﴾ فَاَرْسَلْنَا
عَلَيْهِمُ الطُّوفَانَ وَالْجَرَادَ وَالْقُمَّلَ وَالضَّفَادِعَ وَالدَّمَ اٰيَاتٍ
مُفَصَّلَاتٍ فَاسْتَكْبَرُوا وَكَانُوا قَوْمًا مُجْرِمٖينَ ﴿١٣٣﴾ وَلَمَّا وَقَعَ
عَلَيْهِمُ الرِّجْزُ قَالُوا يَا مُوسَى ادْعُ لَنَا رَبَّكَ بِمَا عَهِدَ عِنْدَكَۚ
لَئِنْ كَشَفْتَ عَنَّا الرِّجْزَ لَنُؤْمِنَنَّ لَكَ وَلَنُرْسِلَنَّ مَعَكَ بَنٖٓي
اِسْرَٓائٖيلَۚ ﴿١٣٤﴾ فَلَمَّا كَشَفْنَا عَنْهُمُ الرِّجْزَ اِلٰٓى اَجَلٍ هُمْ
بَالِغُوهُ اِذَا هُمْ يَنْكُثُونَ ﴿١٣٥﴾ فَانْتَقَمْنَا مِنْهُمْ فَاَغْرَقْنَاهُمْ
فِي الْيَمِّ بِاَنَّهُمْ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا وَكَانُوا عَنْهَا غَافِلٖينَ
﴿١٣٦﴾ وَاَوْرَثْنَا الْقَوْمَ الَّذٖينَ كَانُوا يُسْتَضْعَفُونَ مَشَارِقَ
الْاَرْضِ وَمَغَارِبَهَا الَّتٖي بَارَكْنَا فٖيهَاۜ وَتَمَّتْ كَلِمَتُ
رَبِّكَ الْحُسْنٰى عَلٰى بَنٖٓي اِسْرَٓائٖيلَ بِمَا صَبَرُواۜ وَدَمَّرْنَا مَا
كَانَ يَصْنَعُ فِرْعَوْنُ وَقَوْمُهُ وَمَا كَانُوا يَعْرِشُونَ ﴿١٣٧﴾

**131**- Dema qenciyek (bi hatina mal û serwetê) bi ser wan de bihata, digotin: Ev a hatî ji ber me ye, eger nerindiyek bi ser wan de bihata, nebî Mûsa û yên pê re dikirin sebebê bêoxiriya li ser xwe. Agahdar bin! Bêguman çi tiştê ji xweşî û nexweşiyê ku bigihîje wan ew ji cem Xwedê Teala ye, lê belê pirên wan nizanin.

**132**- Dîsa (ji Mûsa re) Gotin: Tu çi mûcizeyê bînî da ku tu pê sêrê li me bikî, de bîne, vêca em ne ew in ku bawerî bi te bînin.

**133**- Vêca Me jî baraneke dijwar, kulî, sipih, beq û xwîn bi ser wan de anîn ku ev nîşanên pir texlît in. Êdî dîsa jî wan xwe mezin dêran (û wan bawerî neanî) û ew her miletekî gunehkar bûn.

Gava xelkê Misrê, îman neanîn Xwedê, bi rakirina tofana şapê (lehî) û baranê ew ceza kirin, piştre bi dorê; kulî, sipih û beq şand ser wan bi awayekî wisa ew ajal berdane wan da ku bikevin dev û çavên wan, piştre ji jor ve xwîn li ser wan barand, heta ku ava wan giş bû xwîn û xwîn vexwarin. Vêca hatin cem Mûsa Pêxember, jê re gotin: Ji Xwedê Teala hêvî û lava bike da ku van belayan ji ser me rake. Mûsa jî ji Xwedê hêvî û rica kir ku van belayan ji ser wan rake. Êdî Xwedê ji ser wan rakir. Lêbelê dîsa jê re gotin: Hey Mûsa! Bi rastî tu sehrbazekî mezin î û dîsa jî bawerî neanîn.

**134**- Çi dema ezab bi ser wan de hat, gotin: Ya Mûsa! Tu bi xatirê wê peymana ku Xwedê dayî te, ji bo me li ber Xwedayê xwe bigere (da vî ezabî li ser me rake), eger tu ezab ji ser me rakî, bi sond, em ê bawerî bi te bînin û em ê îsraîliyan jî digel te bişînin!

**135**- Vêca çi dema Me heta civaneke diyarkirî ku ew ê bigihîjin me, ezab ji ser wan rakir, di cih de soza xwe şikandin (û ji gotina xwe vegeriyan).

**136**- Êdî bi sedema ku wan bi ayetên me bawerî neanî û jê bêagah bûn, me xwest ji wan heyfê bigirin, me ew di deryayê de xeniqandin.

**137**- Ew qewmê ku (ji aliye firewniyan ve ji bo xizmetê) hatibûn belengazkirin, bi rojhilat û rojava ve, Me ew kirin mîratgirê erda Şamê (erda ku me pîrozkirî) û ji bo îsraîliyan bi sedema sabirkêşiya wan, gotina Xwedayê te (bi têkçûna dijminên wan û mîratgiriya erda Şamê) bi cih hat. Me yên ku Firewn û qewmê wî ava dikirin û baxçeyên ku çêdikirin jî herifandin.

وَجَاوَزْنَا بِبَنٖٓي اِسْرَٓائٖيلَ الْبَحْرَ فَاَتَوْا عَلٰى قَوْمٍ يَعْكُفُونَ
عَلٰٓى اَصْنَامٍ لَهُمْۚ قَالُوا يَا مُوسَى اجْعَلْ لَنَٓا اِلٰهًا كَمَا لَهُمْ
اٰلِهَةٌۜ قَالَ اِنَّكُمْ قَوْمٌ تَجْهَلُونَ ١٣٨ اِنَّ هٰٓؤُلَٓاءِ مُتَبَّرٌ مَا هُمْ
فٖيهِ وَ بَاطِلٌ مَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ١٣٩ قَالَ اَغَيْرَ اللّٰهِ
اَبْغٖيكُمْ اِلٰهًا وَهُوَ فَضَّلَكُمْ عَلَى الْعَالَمٖينَ ١٤٠ وَاِذْ
اَنْجَيْنَاكُمْ مِنْ اٰلِ فِرْعَوْنَ يَسُومُونَكُمْ سُٓوءَ الْعَذَابِۚ
يُقَتِّلُونَ اَبْنَٓاءَكُمْ وَيَسْتَحْيُونَ نِسَٓاءَكُمْۜ وَفٖي ذٰلِكُمْ
بَلَٓاءٌ مِنْ رَبِّكُمْ عَظٖيمٌۚ ١٤١ وَوَاعَدْنَا مُوسٰى ثَلٰثٖينَ لَيْلَةً
وَاَتْمَمْنَاهَا بِعَشْرٍ فَتَمَّ مٖيقَاتُ رَبِّهٖٓ اَرْبَعٖينَ لَيْلَةًۚ وَقَالَ
مُوسٰى لِاَخٖيهِ هٰرُونَ اخْلُفْنٖي فٖي قَوْمٖي وَاَصْلِحْ وَلَا تَتَّبِعْ
سَبٖيلَ الْمُفْسِدٖينَ ١٤٢ وَلَمَّا جَٓاءَ مُوسٰى لِمٖيقَاتِنَا وَكَلَّمَهُ
رَبُّهُۙ قَالَ رَبِّ اَرِنٖٓي اَنْظُرْ اِلَيْكَۜ قَالَ لَنْ تَرٰينٖي وَلٰكِنِ انْظُرْ
اِلَى الْجَبَلِ فَاِنِ اسْتَقَرَّ مَكَانَهُ فَسَوْفَ تَرٰينٖيۚ فَلَمَّا تَجَلّٰى
رَبُّهُ لِلْجَبَلِ جَعَلَهُ دَكًّا وَخَرَّ مُوسٰى صَعِقًاۚ فَلَمَّٓا اَفَاقَ
قَالَ سُبْحَانَكَ تُبْتُ اِلَيْكَ وَاَنَا اَوَّلُ الْمُؤْمِنٖينَ ١٤٣

حزب

قَالَ

**138**- Me îsraîlî di deryayê re derbas kirin, êdî gihîştine cem miletekî ku ew bi îbadetên pûtên xwe ve mijûl bûn. (Benî Îsraîliyan) gotin: Ey Mûsa! Ka çawa ji van re îlah hene, tu jî ji me re îlahekî çêke (da ku em îbadetê wî bikin). (Mûsa) Got: Bêguman hûn miletekî nezan in.

Piştî ku îsraîlî, di deryayê re derbas bûn rastî "'Emalîqe" hatin ku wan perestina golikan dikir. Vêca ji pêxemberê xwe re gotin: Wekî van jî hin pûtên xasê xwe hene ji me re jî pûtekî çêbike. Êdî Mûsa pir hêrs bû; pêşniyaza wan vegerand û bi nezanînê sûcdar kirin.

**139**- Bêguman ev ên ku ji pûtan re îbadet dikin, rewşa ew tê de helak û xesaret e û karê ku ew dikin jî pûç û betal e (vêca çawa hûn dixwazin ku wekî wan bin!).

**140**- Mûsa got: Erê ma ez ê çawa ji bilî Ellah Teala ji bo we li Xwedayekî din bigerim, hal ev e ku Xwedê hûn di ser xelkê dema we re girtine?!

**141**- (Gelî îsraîliyan!) Di bîr bînin, wê dema ku Me hûn ji firewniyan rizgar kirin; wan jan û azara herî dijwar digihand we; kurên we dikuştin û keçên we (ji bo xizmetê) sax dihiştin. Ha di vê (jan û azarê) de, ji aliyê Xwedayê we ve, ji bo we îmtîhaneke mezin bû.

**142**- Me sî şev peyman (civan) da Mûsa û me deh şevên din jî lê zêde kirin, vêca dema (dîdariya digel) Xwedayê te bû çil şevên tekûz. Mûsa ji birayê xwe Harûn re got: Di nav gelê min de bikeve şûna min, wan rast bike û nede pey riya mufsidan.

**143**- Çi dema Mûsa ji bo civanê me hat û Xwedayê wî pê re peyivî. (Mûsa) got: Xwedayê min! Xwe nîşanî min bide da ez te bibînim. (Xwedê) got: Bêguman tu yê min nebînî. Belê berê xwe bide çiyê, êdî eger li cihê xwe rawestiya hingî tu yê min bibînî! Vêca çi dema Xwedayê wî ji çiyê re diyar bû (bi diyariyeke layiqî xwe), êdî çiya bû parçe parçe û bi erdê re misêwa bû. Mûsa jî bêhiş ket ser erdê û hay ji xwe nema. Çi dema bi hişê xwe ve hat, got: Ez Te ji hemû kêmasiyan pak didêrim, ez li ber te tobe dikim (ku careke din ez vê daxwazê nekim) û ez pêşîkê bawermendan im.

Digel ku Mûsa zanîbû Xwedê Teala li cîhanê nayê dîtin jî, ev niyaz jê kir. Lewra dema wî gotinên Xwedê bihîstin xwe ji bîra kir ku li gerdûnê ye û ji wî were ku ew li bihişta rengîn e û gihiştiye Xwedayê xwe!

قَالَ يَا مُوسٰى اِنّ۪ي اصْطَفَيْتُكَ عَلَى النَّاسِ بِرِسَالَاتِي
وَبِكَلَامِي فَخُذْ مَٓا اٰتَيْتُكَ وَكُنْ مِنَ الشَّاكِر۪ينَ ﴿١٤٤﴾ وَكَتَبْنَا
لَهُ فِي الْاَلْوَاحِ مِنْ كُلِّ شَيْءٍ مَوْعِظَةً وَتَفْص۪يلًا لِكُلِّ شَيْءٍۚ
فَخُذْهَا بِقُوَّةٍ وَأْمُرْ قَوْمَكَ يَأْخُذُوا بِاَحْسَنِهَاۜ سَاُر۪يكُمْ دَارَ
الْفَاسِق۪ينَ ﴿١٤٥﴾ سَاَصْرِفُ عَنْ اٰيَاتِيَ الَّذ۪ينَ يَتَكَبَّرُونَ فِي
الْاَرْضِ بِغَيْرِ الْحَقِّۜ وَاِنْ يَرَوْا كُلَّ اٰيَةٍ لَا يُؤْمِنُوا
بِهَاۚ وَاِنْ يَرَوْا سَب۪يلَ الرُّشْدِ لَا يَتَّخِذُوهُ سَب۪يلًاۚ وَاِنْ يَرَوْا
سَب۪يلَ الْغَيِّ يَتَّخِذُوهُ سَب۪يلًاۜ ذٰلِكَ بِاَنَّهُمْ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا
وَكَانُوا عَنْهَا غَافِل۪ينَ ﴿١٤٦﴾ وَالَّذ۪ينَ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا
وَلِقَٓاءِ الْاٰخِرَةِ حَبِطَتْ اَعْمَالُهُمْۜ هَلْ يُجْزَوْنَ اِلَّا مَا كَانُوا
يَعْمَلُونَ ﴿١٤٧﴾ وَاتَّخَذَ قَوْمُ مُوسٰى مِنْ بَعْدِه۪ مِنْ حُلِيِّهِمْ
عِجْلًا جَسَدًا لَهُ خُوَارٌۜ اَلَمْ يَرَوْا اَنَّهُ لَا يُكَلِّمُهُمْ وَلَا
يَهْد۪يهِمْ سَب۪يلًاۢ اِتَّخَذُوهُ وَكَانُوا ظَالِم۪ينَ ﴿١٤٨﴾ وَلَمَّا
سُقِطَ ف۪ٓي اَيْد۪يهِمْ وَرَاَوْا اَنَّهُمْ قَدْ ضَلُّواۙ قَالُوا لَئِنْ لَمْ
يَرْحَمْنَا رَبُّنَا وَيَغْفِرْ لَنَا لَنَكُونَنَّ مِنَ الْخَاسِر۪ينَ ﴿١٤٩﴾

**144**- (Xwedê) got: Ey Mûsa, bi pêxemberiya ji cem xwe û bi axaftina xwe ya digel te, Min tu li ser mirovan re girtiye. Vêca ev a min dayî te bigire û bibe ji şukirdaran.

**145**- Me ji bo Mûsa li ser lewheyên Tewratê ji şîret û hukman hemû tişt bi berfirehî nivîsîn. Vêca (Xwedê jê re got:) bihêz û ji dil wan bigire û li gelê xwe ferman bike ku ew bi ya herî spehî bigirin. (Eger hûn ji rê derkevin) ez ê di nêz de cih û warên jirêderketiyan nîşanî we bidim (ka çawa me ew wêran kirine).

Ev ayeta pîroz dide zanîn ku Tewrat di lewheyan de yanî rûpelan de nivîsayî bû û Xwedê Teala wisa daye Mûsa. Lêbelê di bara wan lewheyan de me çu zanîneke binbir tune. Lê di naveroka wan rûpelan de ji aliyê dînî û îslahî ve îhtiyaca îsraîliyan bi çi tiştî hebûye ew di wan de hebûn.

**146**- Ez ê berê wan ên ku li erdê ji neheqî û bêbextî xwe mezin dikin ji ayetên xwe dagerînim. Eger ew hemû nîşan û ayetan bibînin jî dîsa dê baweriyê bi wan neyînin. Eger ew riya hîdayetê û rastiyê bibînin jî ew ji xwe re nakin rê (û pê de naçin). Eger ew riya şaşî û xerabiyê bibînin dê ji xwe re bikin rêk. Lewra wan bi ayetên me bawerî neanî û ew jê bêagah bûn.

**147**- Ew ên ku wan bi ayetên me û bi dîtina axretê bawerî neanîbû, kirinên wan pûç bûne, ew bes li gorî kirinên ku (li dinyayê) dikin têne xelat û celatkirin.

**148**- Piştî Mûsa çû (Çiyayê Tûrê ji bo munacatê), gelê Mûsa ji xişr (û zînet)ên xwe peykerê golikekî çêkir ku jê re orîn hebû û wan ew ji xwe re kir îlah. Ma wan nedidît ku ew (golik) ne bi wan re dipeyive ne jî riyekê nîşanî wan dide? Wan golik ji xwe re kir îlah û wan li xwe sitemkarî kir.

Dema Mûsa deh rojan zêde li çiyayê Tûr ma, ji îsraîliyan yekî navê xwe Samirî, sen'etkar hebû, ji xişrên wan, heykelê golikekî ji wan re çêkir û got: Xwedayê we û yê Mûsa jî ev e. Lê Xwedayê Mûsa jî hate jibîrakirin, heykelê golikê bi hostayiyeke wisa çêkiribû ku gava ba diket nava wî wekî ku tê de rûh hebe wisa diorîya.

**149**- Çi dema li ser kirinên xwe poşman bûn û dîtin ku wa ye ew ji rê ketine, vêca gotin: Eger Xwedayê me li me neyê rehmê û li gunehên me nebihure teqez em ê bibin ji yên xesirî.

وَلَمَّا رَجَعَ مُوسٰٓى اِلٰى قَوْمِه۪ غَضْبَانَ اَسِفًاۙ قَالَ بِئْسَمَا خَلَفْتُمُونٖى
مِنْ بَعْدٖيۚ اَعَجِلْتُمْ اَمْرَ رَبِّكُمْۚ وَاَلْقَى الْاَلْوَاحَ وَاَخَذَ بِرَاْسِ اَخٖيهِ
يَجُرُّهُٓ اِلَيْهِۜ قَالَ ابْنَ اُمَّ اِنَّ الْقَوْمَ اسْتَضْعَفُونٖى وَكَادُوا يَقْتُلُونَنٖى
فَلَا تُشْمِتْ بِيَ الْاَعْدَٓاءَ وَلَا تَجْعَلْنٖى مَعَ الْقَوْمِ الظَّالِمٖينَ ﴿١٥٠﴾ قَالَ
رَبِّ اغْفِرْ لٖى وَلِاَخٖى وَاَدْخِلْنَا فٖى رَحْمَتِكَۘ وَاَنْتَ اَرْحَمُ
الرَّاحِمٖينَ ﴿١٥١﴾ اِنَّ الَّذٖينَ اتَّخَذُوا الْعِجْلَ سَيَنَالُهُمْ غَضَبٌ
مِنْ رَبِّهِمْ وَذِلَّةٌ فِى الْحَيٰوةِ الدُّنْيَاۜ وَكَذٰلِكَ نَجْزِى الْمُفْتَرٖينَ
﴿١٥٢﴾ وَالَّذٖينَ عَمِلُوا السَّيِّـَٔاتِ ثُمَّ تَابُوا مِنْ بَعْدِهَا وَاٰمَنُٓوا اِنَّ
رَبَّكَ مِنْ بَعْدِهَا لَغَفُورٌ رَحٖيمٌ ﴿١٥٣﴾ وَلَمَّا سَكَتَ عَنْ
مُوسَى الْغَضَبُ اَخَذَ الْاَلْوَاحَۚ وَفٖى نُسْخَتِهَا هُدًى وَرَحْمَةٌ
لِلَّذٖينَ هُمْ لِرَبِّهِمْ يَرْهَبُونَ ﴿١٥٤﴾ وَاخْتَارَ مُوسٰى قَوْمَهُ سَبْعٖينَ
رَجُلًا لِمٖيقَاتِنَاۚ فَلَمَّٓا اَخَذَتْهُمُ الرَّجْفَةُ قَالَ رَبِّ لَوْ شِئْتَ
اَهْلَكْتَهُمْ مِنْ قَبْلُ وَاِيَّايَۜ اَتُهْلِكُنَا بِمَا فَعَلَ السُّفَهَٓاءُ مِنَّاۚ اِنْ
هِيَ اِلَّا فِتْنَتُكَۜ تُضِلُّ بِهَا مَنْ تَشَٓاءُ وَتَهْدٖى مَنْ تَشَٓاءُۜ اَنْتَ
وَلِيُّنَا فَاغْفِرْ لَنَا وَارْحَمْنَا وَاَنْتَ خَيْرُ الْغَافِرٖينَ ﴿١٥٥﴾

وَاكْتُبْ

**150**- Dema Mûsa (ji civanê Xwedayê xwe) bi hêrs û xemgînî bi ser milet de vegeriya (û ji wan re) got: Ev tiştê we li dûv min kiriye (ku we golik ji xwe re kiriye îlah) çi tiştekî pîs e. Erê, we lez li fermana Xwedê kir (çi li we qewimîbû ku we golik heband û we xwe ranegirt, heta ku ez ji civanê Xwedayê xwe vegerim û fermanên wî ji we re bibêjim)? Mûsa pêxember, rûpelênTewratê avêtin û bi serê birayê xwe (Harûn) girt û bi ber xwe ve kişand. (Harûn) Got: Ey kurê diya min! Bêguman vî gelî ez bêzar kirim û hindik mabû ku min bikujin, vêca kêfa neyaran li min neyîne û min ji vî gelê sitemkar nehesibîne!

**151**- (Mûsa) Got: Xwedayê min! Li min û birayê min bibore û me têxe ber dilovaniya xwe. Her tu yî dilovîntirê ji hemû dilovînan!

**152**- Bêguman ew ên ku golik heband-din ji nêz ve dê ji cem Xwedayê wan xezeb li wan bibare û li dinyayê jî dê riswatî bigire ser wan. Ha bi vî awayî em derewînan ceza dikin.

**153**- Herçî wan kesên ku kiryarên nebaş kirin û paşê tobe kirin û bawerî anîn, bêguman Xwedayê te piştî wê (tobe û baweriyê) gunehveşêr e, dilovîn e.

**154**- Dema hêrsa Mûsa danî rûpelên (Tewratê ji erdê) rakir, (ew Tewrata ku) tê de riya rasterêyî û dilovaniyê, ji bo wan kesên ku ji Xwedayê xwe ditirsin nivîsî ye.

Ji ber ku îsraîlî li kirina xwe ya îbadetê golikê poşman bûbûn, Xwedê emir li Mûsa kir ku ji gelê xwe heftê kesî bibijêre, wan bîne hizûra Xwedê, da ku tev bi hev re tobe bikin. Ha ev ayet qala vê dabaşê dike.

**155**- Ji bo civanê me, Mûsa ji gelê xwe heftê zilam bijartin (û anîn hizûra me). Çi dema wê erdheja dijwar ew girtin, Mûsa got: Xwedayê min! Eger te bixwesta te yê berî vêga, ew û min helak bikirana. Ma ji ber kiryarên aqilsivikên me Tu yê me tevan helak bikî? Ev kar, ji ceribandin û îmtîhana te pê ve ne tiştekî din e. Bi wê, tu kê bivê ji rê dixî û kê jî bivê tînî ser riya rast. Tu yî xwedî û arîkarê me, vêca li me bibore, li me were rehmê û Tu yî çêtirînê bexşîneran.

Ew ên ku Mûsa wan ji nêv gelê xwe bijartibû û ji bo tobeyê wan biribû hizûra Xwedê Teala, çi dema axaftina Mûsa ya bi Xwedê re bihîstin, jê re gotin: "Hetta ku em bi deharî (eşkere eşkere) Xwedê nebînin, emê qet baweriyê bi te neyênin." Vêca li wirê erdhejeke dijwar çêbû, ew jî ji hişê xwe çûn û ketin erdê. Mûsa ji Xwedê Teala dua kir, êdî ew afat ji ser wan rakir.

**156**- (Xwedêyo!) Tu di vê dinyayê de qenciyê (jiyaneke xweş, encameke baş û serkeftina ji bo karê baş) û li axretê jî ji bo me rindiyê (çûna bihiştê) binivîse. Bi rastî me bi bal Te ve tobe kir. (Xwedê) Got: Ez kê bivêm ez ê ezabê xwe lê raselitînim û merhemeta min jî dor li her tiştî girtiye. Vêca ez ê wê (dilovaniyê) ji bo wan ên ku xwe (ji kufr û gunehan) diparêzin û zekata xwe didin û ew ên ku bawerî bi ayetên me tînin, misoger bikim.

Piştre Xwedê salixên wan kesên ku li axretê yê ji wan re merhemeta xwe binivîse eşkere dike, da ku xweykitêb xwe nexapînin û zenn nekin ku rehma Xwedê dê bigihîje wan jî û wisa ferman dike:

**157**- Ew ên ku dane pey Pêxemberê Ûmmî. Ew pêxemberê ku salox û nîşanên wî li cem xwe di Tewrat û Incîlê de nivîsandî dibînin, fermana wan bi qenciyê dike û ji xerabiyê wan dide paş, tiştê pak û paqij ji bo wan helal dike û ya pîs û nebaş li ser wan heram dike, bargiranî û qeydên ku xwe pê girêdane li ser wan radike.Vêca ew ên ku bawerî pê anîn, xatirê wî girtin, arîkariya wî li ser neyaran kirin û digel wî dane pey ronahiya (Qur'ana) ku jê re hatî, ha ew in yên ku (li dinya û axretê) serfiraz bûne.

Di ayeta pîroz de bêjeya "Ummî" buhurî ku ew bi daxwaza yê ku nizane binivîse û bixwîne tê û me jî bi nexwenda mane kir. Ew pesnekî pêxemberê me ye. Digel ku ew mirovekî nexwenda bû jî, lêbelê; xwediyê kemala zanînê bû ku ev ji wî re mu'cizeyek e. Ji ber ku qasidiya wî bi bal Xwedê ve tê alîdan, ew qasidê Xwedê ye û ji ber ku bi bal mirovan ve tê alîdan, ew pêxember e. Yanî ji hêla ku ew qasidê Xwedê ye, ew resûl e û ji hêla ku ew fermanên Xwedê ji mirovan re rabigihîne û bibêje, ew Nebî ye, pêxember e.



وَاكْتُبْ لَنَا فٖى هٰذِهِ الدُّنْيَا حَسَنَةً وَفِى الْاٰخِرَةِ اِنَّا
هُدْنَا اِلَيْكَ قَالَ عَذَابٖى اُصٖيبُ بِهٖ مَنْ اَشَاءُ وَرَحْمَتٖى
وَسِعَتْ كُلَّ شَيْءٍ فَسَاَكْتُبُهَا لِلَّذٖينَ يَتَّقُونَ وَيُؤْتُونَ
الزَّكٰوةَ وَالَّذٖينَ هُمْ بِاٰيَاتِنَا يُؤْمِنُونَ ﴿١٥٦﴾ اَلَّذٖينَ
يَتَّبِعُونَ الرَّسُولَ النَّبِىَّ الْاُمِّىَّ الَّذٖى يَجِدُونَهُ مَكْتُوبًا
عِنْدَهُمْ فِى التَّوْرٰيةِ وَالْاِنْجٖيلِ يَأْمُرُهُمْ بِالْمَعْرُوفِ
وَيَنْهٰيهُمْ عَنِ الْمُنْكَرِ وَيُحِلُّ لَهُمُ الطَّيِّبَاتِ وَيُحَرِّمُ
عَلَيْهِمُ الْخَبَائِثَ وَيَضَعُ عَنْهُمْ اِصْرَهُمْ وَالْاَغْلَالَ الَّتٖى
كَانَتْ عَلَيْهِمْ فَالَّذٖينَ اٰمَنُوا بِهٖ وَعَزَّرُوهُ وَنَصَرُوهُ
وَاتَّبَعُوا النُّورَ الَّذٖى اُنْزِلَ مَعَهُ اُولٰئِكَ هُمُ الْمُفْلِحُونَ
﴿١٥٧﴾ قُلْ يَا اَيُّهَا النَّاسُ اِنّٖى رَسُولُ اللّٰهِ اِلَيْكُمْ جَمٖيعًا الَّذٖى
لَهُ مُلْكُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ لَا اِلٰهَ اِلَّا هُوَ يُحْيٖ
وَيُمٖيتُ فَاٰمِنُوا بِاللّٰهِ وَرَسُولِهِ النَّبِىِّ الْاُمِّىِّ الَّذٖى
يُؤْمِنُ بِاللّٰهِ وَكَلِمَاتِهٖ وَاتَّبِعُوهُ لَعَلَّكُمْ تَهْتَدُونَ ﴿١٥٨﴾
وَمِنْ قَوْمِ مُوسٰى اُمَّةٌ يَهْدُونَ بِالْحَقِّ وَبِهٖ يَعْدِلُونَ ﴿١٥٩﴾

**158**- (Ey Pêxember!) Bibêje: Gelî mirovan! Bêguman ez qasidê Xwedê me ku bi bal we hemûyan ve hatime şandin. Ew Xwedayê ku her jê re ye xwedaniya erd û asîmanan, ji wî pê ve tu xweda nîn in, ew jiyanê dide û dimirîne, nexwe bi Xwedê Teala û pêxemberê wî yê ummî, ew ê ku bi Xwedê Teala û peyvên wî (Qur'anê) bawerî tîne, bawerî bînin û bidin pey (şopa) wî (pêxemberî) da ku we bi ser riya rast ve bibin.

**159**- Civatek ji gelê Mûsa heye ku riya heq û rast bi ber xelkê dixin û pê hukim û fermandariyê dikin.

Mebest ji wê umetê ew cihû ne ku baweriyê bi Muhemmed (s) anîne, yan jî ew kes in ku di çaxê Mûsa de şîreta qenciyê li xelkê kirine û ew anîne rêya rast û durust.

وَقَطَّعْنَاهُمُ اثْنَتَيْ عَشْرَةَ اَسْبَاطًا اُمَمًا وَاَوْحَيْنَا اِلٰى
مُوسٰى اِذِ اسْتَسْقٰيهُ قَوْمُهُ اَنِ اضْرِبْ بِعَصَاكَ الْحَجَرَ
فَانْبَجَسَتْ مِنْهُ اثْنَتَا عَشْرَةَ عَيْنًا قَدْ عَلِمَ كُلُّ
اُنَاسٍ مَشْرَبَهُمْ وَظَلَّلْنَا عَلَيْهِمُ الْغَمَامَ وَاَنْزَلْنَا
عَلَيْهِمُ الْمَنَّ وَالسَّلْوٰى كُلُوا مِنْ طَيِّبَاتِ مَا
رَزَقْنَاكُمْ وَمَا ظَلَمُونَا وَلٰكِنْ كَانُوا اَنْفُسَهُمْ
يَظْلِمُونَ ١٦٠ وَاِذْ قِيلَ لَهُمُ اسْكُنُوا هٰذِهِ الْقَرْيَةَ
وَكُلُوا مِنْهَا حَيْثُ شِئْتُمْ وَقُولُوا حِطَّةٌ وَادْخُلُوا
الْبَابَ سُجَّدًا نَغْفِرْ لَكُمْ خَطِيٓئَاتِكُمْ سَنَزِيدُ
الْمُحْسِنِينَ ١٦١ فَبَدَّلَ الَّذِينَ ظَلَمُوا مِنْهُمْ قَوْلًا
غَيْرَ الَّذِي قِيلَ لَهُمْ فَاَرْسَلْنَا عَلَيْهِمْ رِجْزًا مِنَ السَّمَٓاءِ
بِمَا كَانُوا يَظْلِمُونَ ١٦٢ وَسْـَٔلْهُمْ عَنِ الْقَرْيَةِ الَّتِي
كَانَتْ حَاضِرَةَ الْبَحْرِ اِذْ يَعْدُونَ فِي السَّبْتِ اِذْ
تَأْتِيهِمْ حِيتَانُهُمْ يَوْمَ سَبْتِهِمْ شُرَّعًا وَيَوْمَ لَا يَسْبِتُونَ
لَا تَأْتِيهِمْ كَذٰلِكَ نَبْلُوهُمْ بِمَا كَانُوا يَفْسُقُونَ ١٦٣

وَاِذْ قَالَتْ

**160**- Me gelê Mûsa gerand dozdeh êl û her êl desteyek bi serê xwe. Dema gelê wî av jê xwest, me jê re wehî şand: Gopalê xwe li kevir bixe! (Piştî Mûsa gopalê xwe li kevir da) vêca ji kêvir dozdeh kanî zan û derbûn. Her êlê serkaniya xwe zanî û nas kir. Paşê Me ewr li ser wan kir sî û sîwan, me gezo û sûsik bi ser wan de barandin. (Û me ji wan re got:) Ji wî rizqê xweş û pak ê ku me daye we bixwin. (Ji ber ku ew li ber fermana min rabûn) wan ne li me zilim kir, belê wan her li xwe bi xwe zilim kir.

Di ayeta pîroz de bêjeya "Esbat" buhurî, bi daxwaza nevî ye, geljimareya sibt e. Zaroyên îsraîl ji diwazdeh kurê Yaqûb zêde bûne û bûne diwazdeh êl û bavik, giş jî neviyên Yaqûb in. Ev ayet, jêder e ku divê milletên misliman li ser axa xwe desthilat û xwedan îqtîdar bin. Divê her kes tixûb û welatê xwe nas bike û her kes ji dewlemendiyên xwe yên sirûştî îstîfade bike. Bi tu awa û şeklî tixûbên welatî û hiqûqên maddî ji bo biratiyê nabin asteng. Lewra hebûn û tunebûna dewletê ne meseleyeke dînî ye. Belkî; meseleyeke dinyewî ye. Hîç mafê tu kesî nîne ku bi navê ummetê, yan jî bi navê biratiyê dest deynê ser zengîniyên mislimanên xeyrê xwe. Lewra vê ayeta pîroz ev mijar zelal kiriye û ji îctîhada şaş û sûî-îstîmalê re cih nehiştiye. Divê ev heqîqet jî tim li ber çavan be ku gava dewleta mislimanan a yekgirtî hebe jî û li ser serê wan xelife jî mewcûd be, dîsa divê sînorê gelên misliman diyar be, madenên wan ji bo wan bin, tu xelkê din êrîşî wan nekin, lewra; bingeh ev e ku divê her gel zanibe serkaniya wî kîjan e. Lêbelê heke ji wî zêde be bila bide birayên xwe. Bi rastî ev ayeta ha ji bo haştî, hevkarî, biratî û hevdostiya gelên misliman hîmekî xurt e. Yanî her xelkên misliman divê di welatê xwe de desthilat bin, xwediyê cih û warê xwe bin û li warê xwe nebiyanî bin.

**161**- Wê demê (ji aliyê Xwedê ve) ji îsraîliyan re hate gotin: Li vî bajarî (Qudsê) bi cih bibin û bi dorfirehî li cihê hûn bivên ji ni'metên wê bixwin û bibêjin: (Xwedêyo) Gunehên me ji ser me rake û xweşikandî, xweçemandî di derî re têkevin hundir(ê bajêr), vêca Em ê li gunehên we biborin û em ê (xêra) qencîkaran bêhtir bikin.

**162**- Vêca (piştî van fermanên me li wan kirin) ew ên ku zilm û zordarî kirin, ew fermana Xwedê ya ku li wan kirî bi tiştekî din guhartin. Êdî bi sedema zilma ku kirin Me ji asîmanan ezabek bi ser wan de şand.

Li gorî rîwayetan ev ezab êşa Taûnê (zikêşî-Kolera) ye ku di nava saetekî de ji wan bîst û çar hezar (24.000) kes pê mirine.

**163**- (Resûlê min!) Ji (wî) gundê ku li ber lêva deryayê bû, dema wan di roja şemiyê de (bi girtina masiyan) destdirêjî kirin, ji îsraîliyan pirs bike. Lewra roja şemiyê (ku masîgirtin ji wan re qedexe bû) masiyên wan dihatin (û serav dibûn) û ku ne roja şemiyê bû masî ji wan re nedihatin. Her wiha bi sedem jirêderketina wan me ew bi vê belayê îmtîhan kirin.

وَاِذْ قَالَتْ اُمَّةٌ مِنْهُمْ لِمَ تَعِظُونَ قَوْمًاۙ اللّٰهُ مُهْلِكُهُمْ اَوْ
مُعَذِّبُهُمْ عَذَابًا شَدِيدًاۜ قَالُوا مَعْذِرَةً اِلٰى رَبِّكُمْ وَلَعَلَّهُمْ
يَتَّقُونَ ﴿١٦٤﴾ فَلَمَّا نَسُوا مَا ذُكِّرُوا بِهٖٓ اَنْجَيْنَا الَّذِينَ يَنْهَوْنَ
عَنِ السُّٓوءِ وَاَخَذْنَا الَّذِينَ ظَلَمُوا بِعَذَابٍ بَئِيسٍ بِمَا كَانُوا
يَفْسُقُونَ ﴿١٦٥﴾ فَلَمَّا عَتَوْا عَنْ مَا نُهُوا عَنْهُ قُلْنَا لَهُمْ كُونُوا قِرَدَةً
خَاسِئِينَ ﴿١٦٦﴾ وَاِذْ تَاَذَّنَ رَبُّكَ لَيَبْعَثَنَّ عَلَيْهِمْ اِلٰى يَوْمِ الْقِيٰمَةِ
مَنْ يَسُومُهُمْ سُٓوءَ الْعَذَابِۜ اِنَّ رَبَّكَ لَسَرِيعُ الْعِقَابِۚ وَاِنَّهُ
لَغَفُورٌ رَحِيمٌ ﴿١٦٧﴾ وَقَطَّعْنَاهُمْ فِي الْاَرْضِ اُمَمًاۚ مِنْهُمُ الصَّالِحُونَ
وَمِنْهُمْ دُونَ ذٰلِكَۘ وَبَلَوْنَاهُمْ بِالْحَسَنَاتِ وَالسَّيِّـَٔاتِ لَعَلَّهُمْ
يَرْجِعُونَ ﴿١٦٨﴾ فَخَلَفَ مِنْ بَعْدِهِمْ خَلْفٌ وَرِثُوا الْكِتَابَ يَاْخُذُونَ
عَرَضَ هٰذَا الْاَدْنٰى وَيَقُولُونَ سَيُغْفَرُ لَنَاۚ وَاِنْ يَاْتِهِمْ عَرَضٌ
مِثْلُهُ يَاْخُذُوهُۜ اَلَمْ يُؤْخَذْ عَلَيْهِمْ مِيثَاقُ الْكِتَابِ اَنْ لَا يَقُولُوا
عَلَى اللّٰهِ اِلَّا الْحَقَّ وَدَرَسُوا مَا فِيهِۜ وَالدَّارُ الْاٰخِرَةُ خَيْرٌ
لِلَّذِينَ يَتَّقُونَۜ اَفَلَا تَعْقِلُونَ ﴿١٦٩﴾ وَالَّذِينَ يُمَسِّكُونَ
بِالْكِتَابِ وَاَقَامُوا الصَّلٰوةَۜ اِنَّا لَا نُضِيعُ اَجْرَ الْمُصْلِحِينَ ﴿١٧٠﴾

**164**- Civatekê ji wan got: (Gelî civata şîretkaran!) ji bo çi hûn li qewmekî wisa şîretê dikin ku Xwedê Teala dê wan helak bike, wan ji holê radike yan jî ew ê ezabekî pir dijwar bide wan? (Şîretkaran) Gotin: (em şîretan dikin) da ku li cem Xwedayê we ji me re bibe hêncet û belkî ew xwe biparêzin (li xwe bizivirin û hay ji ferman û qedexeyên Xwedê bimînin).

**165**- Vêca dema gelê Mûsa ew şîretên ku li wan dihate kirin ji bîr kirin, me ew ên ku hewl didan da ku xerabî neyê kirin rizgar kirin û ew ên ku sitemkarî dikirin Me bi sebûnet jirêderketina wan, bi ezabekî dijwar ew hingaftin.

**166**- Êdî dema li ser ya ku nehya wan jê hatî kirin xwe mezin kirin (ji qedexeyên Xwedê xwe dûr nekirin), me ji wan re got: Bibin meymûnên riswa û rezîl.

Ji ber ku êleke cihûyan rêz û siyaneta roja şemiyê negirtine Xwedê Teala ew xistine şiklê meymûn û beraz û ew mesix kirine. Di wan umetên berê de ev mesix çêdibû. Ev wek ceza Xwedê Teala dida wan mirovên ku ji rê derdiketin. Lêbelê di bara vê mijarê de: Gelo bi rastî Xwedê Teala wan xistiye şiklê meymûnê yan jî exlaqê wan xirabûye û wek meymûnê bûne qirdik? Goftûgo û fikrên cihê cihê di nav aliman de hene.

**167**- ( Resûlê min! Di bîr bîne) Dema Xwedayê te (pêşiyên îsraîliyan) agahdar kirin ku heta roja qiyametê teqez ew ê hin mirovên wisa bi ser wan de bişîne ku wan li îşkenceya herî dijwar biçêrînin (û ezabê tund bidin wan). Bêguman Xwedayê te cezabilez e û bêguman Xwedayê te gunehveşêr e, dilovîn e.

**168**- Me ew (gelê Mûsa) li ser erdê kom bi kom ji hev parçe kirin. Hin ji wan qenc û çaksaz bûn û hin ji wan ne wisan bûn û me ew bi xweşî û nexweşiyan ceribandin da ku li xwe bizivirin (ji xerabiyê vegerin).

**169**- Vêca di pey wan re hin hatin bûne wêrtê Tewratê (wê dixwînin belê pê kar nakin), lezê li ya nêzîk û nehêja dikin (ku bi dinyayê digirin û axretê berdidin). Ew wisa dibêjin: Jixwe (çawa be jî) Xwedê dê li gunehên me bibore. Eger pertalekî wekî wê (yê nehêja) ji wan re bê dîsa dê wî bigirin. Erê, ma di Tewratê de peyman ji wan nehatibû standin ku ew li ser (navê) Xwedê Teala ji rastiyê pê ve tiştekî din nebêjin, wan Tewrat jî xwendibû (ka çi tê de ye). Teqez ji bo wan ên ku xwe (ji gunehan) diparêzin axret çêtir e. Ma hê jî hûn aqil nagirin?

**170**- Ew ên ku xwe bi Qur'anê digirin û bi duristî nimêjê dikin, bêguman em xêra qencîkaran winda nakin.

وَاِذْ نَتَقْنَا الْجَبَلَ فَوْقَهُمْ كَاَنَّهُ ظُلَّةٌ وَظَنُّٓوا اَنَّهُ وَاقِعٌ
بِهِمْۚ خُذُوا مَٓا اٰتَيْنَاكُمْ بِقُوَّةٍ وَاذْكُرُوا مَا فِيهِ لَعَلَّكُمْ تَتَّقُونَ
١٧١ وَاِذْ اَخَذَ رَبُّكَ مِنْ بَنٖٓي اٰدَمَ مِنْ ظُهُورِهِمْ ذُرِّيَّتَهُمْ
وَاَشْهَدَهُمْ عَلٰٓى اَنْفُسِهِمْۚ اَلَسْتُ بِرَبِّكُمْۜ قَالُوا بَلٰىۚ شَهِدْنَاۚ
اَنْ تَقُولُوا يَوْمَ الْقِيٰمَةِ اِنَّا كُنَّا عَنْ هٰذَا غَافِلٖينَۙ ١٧٢ اَوْ تَقُولُٓوا
اِنَّمَٓا اَشْرَكَ اٰبَٓاؤُ۬نَا مِنْ قَبْلُ وَكُنَّا ذُرِّيَّةً مِنْ بَعْدِهِمْۚ
اَفَتُهْلِكُنَا بِمَا فَعَلَ الْمُبْطِلُونَ ١٧٣ وَكَذٰلِكَ نُفَصِّلُ الْاٰيَاتِ
وَلَعَلَّهُمْ يَرْجِعُونَ ١٧٤ وَاتْلُ عَلَيْهِمْ نَبَاَ الَّذٖٓي اٰتَيْنَاهُ اٰيَاتِنَا
فَانْسَلَخَ مِنْهَا فَاَتْبَعَهُ الشَّيْطَانُ فَكَانَ مِنَ الْغَاوٖينَ ١٧٥ وَلَوْ
شِئْنَا لَرَفَعْنَاهُ بِهَا وَلٰكِنَّهُٓ اَخْلَدَ اِلَى الْاَرْضِ وَاتَّبَعَ هَوٰيهُۚ
فَمَثَلُهُ كَمَثَلِ الْكَلْبِۚ اِنْ تَحْمِلْ عَلَيْهِ يَلْهَثْ اَوْ تَتْرُكْهُ
يَلْهَثْۜ ذٰلِكَ مَثَلُ الْقَوْمِ الَّذٖينَ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَاۚ فَاقْصُصِ
الْقَصَصَ لَعَلَّهُمْ يَتَفَكَّرُونَ ١٧٦ سَٓاءَ مَثَلًا الْقَوْمُ الَّذٖينَ
كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا وَاَنْفُسَهُمْ كَانُوا يَظْلِمُونَ ١٧٧ مَنْ يَهْدِ اللّٰهُ
فَهُوَ الْمُهْتَدٖيۚ وَمَنْ يُضْلِلْ فَاُولٰٓئِكَ هُمُ الْخَاسِرُونَ ١٧٨

وَلَقَدْ

**171**- Di bîr bîne, wê dema me Çiyayê Tûr di ser gelê Mûsa re mîna banekî/sîwanekê bilind kir û guman dikirin ku ew ê bi ser wan de bikeve. (Me ji wan re got) Ev a me daye we ji dil û bi hêz bigirin, ya ku di nav de ye bînin bîra xwe (û li gorî wê tevbigerin) da qene hûn (ji ezabê min) xwe biparêzin.

**172**- ( Resûlê min!) Dema Xwedayê te ji pişta ademiyan zuriyeta wan girt û ew xwe bi xwe li ser hev kirine şahid (û ji wan re got) ma ez ne Xwedayê we me? Hemûyan got: Belê, em şahdeyiyê didin (ku Tu Xwedayê me yî). Ev şahdeyî ji bo vê ye, da ku roja qiyametê hûn nebêjin em ji vê bêhay bûn.

Di heqê tefsîra vê ayetê de ji sehabiyan wiha hatiye ragihandin: Xwedê Teala, çi dema Adem xuliqand, zuriyeta wî wekî zerreyan bûn ji pişta wî deranî û peyman ji wan sitand ku ew Xwedayê wan e. Wan jî ev yek qebûl kirin û ew ji bo vê bûne şahid.

**173**- Yan jî da hûn nebêjin: (Ma em çi bikin) Hê berê, bavên me jî ji Xwedê Teala re hevpişk çêkiribûn û em jî nifşekî ku di pey wan re hatin (me jî çav li wan kir). Ma êdî ji ber kiryara rêşaşan (ku bûne sersedemê muşrîkiya me) Tu yê me helak bikî?

**174**- Ha bi vî awayî em ayetên xwe bi berfirehî aşkera dikin da ku ew (ji kufrê) vegerin.

**175**- (Resûlê min!) Ji cihûyan re serpêhatiya wî mirovî bibêje, ew ê ku me ayetên xwe danê vêca ji zanîna wan ayetan derket û xwe jê vekêşa. Êdî şeytan bi dorê ket û xwe gihandê û di dawiyê de bû ji rêşaşan.

**176**- Eger me viyabûya me yê bi ayetên xwe qedir bidayê û merteba wî bilind kiribûya, lê belê wî bi dinyayê girt û li pey daxwaza xwe çû. Vêca meseleya wî (di xerabiyê de) wekî meseleya kûçik e; eger tu bi ser de biçî dê zimanê xwe derêxe û bike helkehelk, eger tu bi ser de neçî dîsa dê zimanê xwe derêxe û bike helkehelk. Ha ev e rewşa wê civata ku bi ayetên me bawerî nayîne. (Resûlê min!) Vê qiseyê (ji umeta xwe re) bibêje, da ku ew jê îbretê bigirin (û bêne îmanê).

**177**- Rewşa wan kesên ku bi ayetên me bawerî nayînin û ew her li xwe bi xwe neheqiyê dikin, çi rewşeke xerab e!

**178**- Xwedê Teala, kê bîne ser rê vêca ew e yê ku rasterêbûyî, kê jî ji rê derêxe vêca yên ku ziyan kirin her ew in.

وَلَقَدْ ذَرَأْنَا لِجَهَنَّمَ كَثِيرًا مِنَ الْجِنِّ وَالْاِنْسِ لَهُمْ قُلُوبٌ لَا يَفْقَهُونَ
بِهَا وَلَهُمْ اَعْيُنٌ لَا يُبْصِرُونَ بِهَا وَلَهُمْ اٰذَانٌ لَا يَسْمَعُونَ بِهَا
اُولٰٓئِكَ كَالْاَنْعَامِ بَلْ هُمْ اَضَلُّ اُولٰٓئِكَ هُمُ الْغَافِلُونَ ﴿١٧٩﴾ وَلِلّٰهِ
الْاَسْمَٓاءُ الْحُسْنٰى فَادْعُوهُ بِهَا وَذَرُوا الَّذِينَ يُلْحِدُونَ فٖٓى اَسْمَٓائِهٖ
سَيُجْزَوْنَ مَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿١٨٠﴾ وَمِمَّنْ خَلَقْنَٓا اُمَّةٌ يَهْدُونَ
بِالْحَقِّ وَبِهٖ يَعْدِلُونَ ﴿١٨١﴾ وَالَّذِينَ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا سَنَسْتَدْرِجُهُمْ
مِنْ حَيْثُ لَا يَعْلَمُونَ ﴿١٨٢﴾ وَاُمْلٖى لَهُمْ اِنَّ كَيْدٖى مَتٖينٌ ﴿١٨٣﴾ اَوَلَمْ
يَتَفَكَّرُوا مَا بِصَاحِبِهِمْ مِنْ جِنَّةٍ اِنْ هُوَ اِلَّا نَذٖيرٌ مُبٖينٌ ﴿١٨٤﴾ اَوَلَمْ
يَنْظُرُوا فٖى مَلَكُوتِ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَمَا خَلَقَ اللّٰهُ
مِنْ شَیْءٍ وَاَنْ عَسٰٓى اَنْ يَكُونَ قَدِ اقْتَرَبَ اَجَلُهُمْ فَبِاَیِّ حَدٖيثٍ
بَعْدَهُ يُؤْمِنُونَ ﴿١٨٥﴾ مَنْ يُضْلِلِ اللّٰهُ فَلَا هَادِیَ لَهُ وَيَذَرُهُمْ فٖى
طُغْيَانِهِمْ يَعْمَهُونَ ﴿١٨٦﴾ يَسْـَٔلُونَكَ عَنِ السَّاعَةِ اَيَّانَ مُرْسٰيهَا
قُلْ اِنَّمَا عِلْمُهَا عِنْدَ رَبّٖى لَا يُجَلّٖيهَا لِوَقْتِهَٓا اِلَّا هُوَ ثَقُلَتْ فِى
السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ لَا تَأْتٖيكُمْ اِلَّا بَغْتَةً يَسْـَٔلُونَكَ كَاَنَّكَ حَفِیٌّ
عَنْهَا قُلْ اِنَّمَا عِلْمُهَا عِنْدَ اللّٰهِ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَ النَّاسِ لَا يَعْلَمُونَ ﴿١٨٧﴾

**179**- Sond be, me ji cin û însanan gelek kes ji bo cehenemê afirandin. Dilê wan hene tênagihên û çavên wan hene pê nabînin û guhên wan heye pê nabihîzin. Ha ew, mîna heywanan e, belkî hê jî rêşaştir in. Ew, her yên bêhay bi xwe ne.

Ev ayeta pîroz, dide zanîn ku mirovê ji dîn û Xwedayê xwe bêhay be, ew ji heywên jî rêşaştir e. Lewra heywan li fêde û çêriya xwe digerin ji gurî û zerarê direvin. Lêbelê mirovê xafil vê yekê jî nizane û rasterast berê xwe dide agirê dojehê!

**180**- Navên herî spehî (Esma'ul-Husna) ji bo Xwedê Teala ne. Nexwe bi wan navan ji Xwedê daxwazê bikin û ew ên ku der barê navên Xwedê Teala de xwar diçin wan bihêlin (ji Xwedê re); ew ê bigihên cezayê kar û kiryarên ku dikin.

Ev ayeta pîroz dide zanîn ku navên herî xweşik û rind ên Xwedê ne û ferman li me hatiye kirin ku em bi wan navan lave-lavê ji Xwedê bikin û bi wan ji wî dua bikin. Pêxemberê me yê alîcenab jî, di hedîseke xwe ya şerîf de wiha gotiye: "Not û neh navên Xwedê hene, kî wan ji ber bike, hemin yê biçe bihiştê."

**181**- Ji mexlûqên me cemaeteke pir heye ku heqî û riya rast dibînin û didine ber xelkê û pê jî hukim dikin.

**182**- Ew ên ku bi ayetên me bawerî nayînin, em ê wan bêyî ku pê bihesin, hêdî hêdî ber bi ezabê (helakê) ve bibin.

**183**- Ez (bi paşdexistina ceza) muhletê didime wan, bêguman kemîn (û hingaftin û azar)a min pir dijwar e.

**184**- Erê, ma ew nafikrin ku tu dînîtî li cem hevalê wan (Muhemmed) tune ye? Ew, her hişyarkerekî aşkera ye.

**185**- Ma ew li mezinahiya erd û asîmanan, li çiqas tiştê ku Xwedê ew afirandiye û li ecelê wan ê ku nêzîk bûye, nanêrin (ku êdî bi lez îmanê bînin)? Nexwe, ma ew ê piştî Qur'anê bi çi gotinê bawerî bînin?

**186**- Kî ku Xwedê wî gumrah bike (ji rê derxe) êdî jê re tu rêber nîn e û Xwedê wan di xerabiya (kufr û çavsorî ya) wan de her sergêjane dihêle.

**187**- (Resûlê min!) Ji te pirsa roja qiyametê dikin; ka kengê ye û dê kengê biqewime? (Ji wan re) Bibêje: Bêguman zanîna wê bes li cem Xwedayê min e. Ji Xwedê pê ve tu kes nikare dema hatina wê aşkera bike. Ew roj li ser xelkê erd û asîmanan giran tê. Ew ê ji nişka ve bi ser we de bê. Ew qiyametê ji te dipirsin her wekî ku tu wê zanibî. (Ji wan re) Bibêje: Zanîna wê bes li nik Xwedê Teala ye, lê belê pirên mirovan (vê) nizanin.

قُلْ لَٓا اَمْلِكُ لِنَفْسٖي نَفْعًا وَلَا ضَرًّا اِلَّا مَا شَٓاءَ اللّٰهُۜ وَلَوْ كُنْتُ
اَعْلَمُ الْغَيْبَ لَاسْتَكْثَرْتُ مِنَ الْخَيْرِۚ وَمَا مَسَّنِيَ السُّٓوءُۚ اِنْ اَنَا
اِلَّا نَذٖيرٌ وَبَشٖيرٌ لِقَوْمٍ يُؤْمِنُونَ ١٨٨ هُوَ الَّذٖي خَلَقَكُمْ مِنْ
نَفْسٍ وَاحِدَةٍ وَجَعَلَ مِنْهَا زَوْجَهَا لِيَسْكُنَ اِلَيْهَاۚ فَلَمَّا تَغَشّٰيهَا
حَمَلَتْ حَمْلًا خَفٖيفًا فَمَرَّتْ بِهٖۚ فَلَمَّٓا اَثْقَلَتْ دَعَوَا اللّٰهَ رَبَّهُمَا
لَئِنْ اٰتَيْتَنَا صَالِحًا لَنَكُونَنَّ مِنَ الشَّاكِرٖينَ ١٨٩ فَلَمَّٓا اٰتٰيهُمَا
صَالِحًا جَعَلَا لَهُ شُرَكَٓاءَ فٖيمَٓا اٰتٰيهُمَاۚ فَتَعَالَى اللّٰهُ عَمَّا يُشْرِكُونَ
١٩٠ اَيُشْرِكُونَ مَا لَا يَخْلُقُ شَيْـًٔا وَهُمْ يُخْلَقُونَۘ ١٩١ وَلَا
يَسْتَطٖيعُونَ لَهُمْ نَصْرًا وَلَٓا اَنْفُسَهُمْ يَنْصُرُونَ ١٩٢ وَاِنْ
تَدْعُوهُمْ اِلَى الْهُدٰى لَا يَتَّبِعُوكُمْۜ سَوَٓاءٌ عَلَيْكُمْ اَدَعَوْتُمُوهُمْ
اَمْ اَنْتُمْ صَامِتُونَ ١٩٣ اِنَّ الَّذٖينَ تَدْعُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ
عِبَادٌ اَمْثَالُكُمْ فَادْعُوهُمْ فَلْيَسْتَجٖيبُوا لَكُمْ اِنْ كُنْتُمْ
صَادِقٖينَ ١٩٤ اَلَهُمْ اَرْجُلٌ يَمْشُونَ بِهَٓاۘ اَمْ لَهُمْ اَيْدٍ يَبْطِشُونَ
بِهَٓاۘ اَمْ لَهُمْ اَعْيُنٌ يُبْصِرُونَ بِهَٓاۘ اَمْ لَهُمْ اٰذَانٌ يَسْمَعُونَ
بِهَاۜ قُلِ ادْعُوا شُرَكَٓاءَكُمْ ثُمَّ كٖيدُونِ فَلَا تُنْظِرُونِ ١٩٥
اِنَّ

**188**- (Resûlê min!) Bibêje: Ji ya Xwedê Teala xwestibe pê ve ez nikarim tu feydê bidim xwe û nikarim tu zerarê ji ser xwe jî bidim alî. Eger min bi ya nependî zanîbûya min ê hê bêhtir qencî bikira û ji ya bizerar û ziyan jî min ê xwe bidaya paş. Bes ji bo miletekî ku bawerî bînin, ez her hişyarker û mîzgînber im.

**189**- Ew Xweda ye, yê ku hûn ji yek nefsê çêkirine û hevjîna wê jî jê çêkiriye da ku bi bal ve vehewe. Vêca çi dema çû nivîna wê, bi hemleke sivik bihemil bû û di vî halî de demekê ma. Çi dema barê wê giran bû (zaroka wê di zikê wê de mezin bû) her duyan ji Xwedayê xwe daxwaz kir (gotin): Sond be eger tu zarokekî salih bidî me teqez em ê bibin ji şukirdaran.

**190**- Vêca dema Xwedê Teala (duaya wan qebûl kir û) zarokekî salih da wan (û ji wî jî dê û bav hatin meydanê êdî ew dê û bav ji tewhîdê dûr bûn û) der barê dayîna Xweda de ji Xwedê Teala re şerîk çêkirin. Xwedê Teala ji şirka ku ew dikin pak û bilind e.

Ew "Şirk" ya ku di ayeta pîroz de behsa wê hatiye kirin, ne ji Adem û Hewwayê çêbûye. Lêbelê ji nesla di pey wan de çêbûye ku ew kinêsa wan e.

**191**- Erê ma ew wan (pût) ên ku nikarin tiştekî biafirînin û ew bi xwe jî hatine afirandin ji Xwedê Teala re dikin hevpişk?!

**192**- Ew (pût) nikarin arîkariya wan (perestiyên xwe) bikin û nikarin arîkariya xwe jî bikin.

**193**- Eger hûn wan (pûtan) gazî bal riya rast ve bikin, ew li dûv we nayên. Li ser we wekhev e; çi hûn gazî wan bikin çi jî gazî wan nekin (ji ber ku ew bêrih û bêgiyan in, dengê we nabihîzin û ew li pey we nayên).

**194**- (Gelî kafiran!) Bêguman ew pûtên ku hûn ji bilî Xwedê Teala wan dihebînin, ew jî mîna we mexlûqên Xwedê ne. Eger hûn (di doza xwe de) rastbêj in, vêca gazî wan bikin, bila ew jî bersiva we bidin.

**195**- Ma qey lingên wan (pûtan) hene ku bi wan bi rê ve biçin, an destên wan hene ku bi wan bigirin, an çavên wan hene ku bi wan bibînin an jî ji wan re guh hene ku bi wan bibihîzin? (ji wan re) Bibêje: Hûn gazî hevpişkên xwe bikin, paşê (hûn û ew pêk ve) dek û dolabên xwe bigerînin û (eger ji dest we bê) tu derfetê jî nedine min (dîsa hûn nikarin ji ya ku ez li serê me min bidin paş, lewra Xwedayê min arîkarê min e).

اِنَّ وَلِيِّیَ اللّٰهُ الَّذ۪ي نَزَّلَ الْكِتَابَ وَهُوَ يَتَوَلَّى الصَّالِح۪ينَ ١٩٦
وَالَّذ۪ينَ تَدْعُونَ مِنْ دُونِه۪ لَا يَسْتَط۪يعُونَ نَصْرَكُمْ وَلَٓا
اَنْفُسَهُمْ يَنْصُرُونَ ١٩٧ وَاِنْ تَدْعُوهُمْ اِلَى الْهُدٰى لَا يَسْمَعُواۜ
وَتَرٰيهُمْ يَنْظُرُونَ اِلَيْكَ وَهُمْ لَا يُبْصِرُونَ ١٩٨ خُذِ الْعَفْوَ
وَأْمُرْ بِالْعُرْفِ وَاَعْرِضْ عَنِ الْجَاهِل۪ينَ ١٩٩ وَاِمَّا يَنْزَغَنَّكَ
مِنَ الشَّيْطَانِ نَزْغٌ فَاسْتَعِذْ بِاللّٰهِۜ اِنَّهُ سَم۪يعٌ عَل۪يمٌ ٢٠٠
اِنَّ الَّذ۪ينَ اتَّقَوْا اِذَا مَسَّهُمْ طَٓائِفٌ مِنَ الشَّيْطَانِ تَذَكَّرُوا
فَاِذَا هُمْ مُبْصِرُونَۚ ٢٠١ وَاِخْوَانُهُمْ يَمُدُّونَهُمْ فِي الْغَيِّ ثُمَّ
لَا يُقْصِرُونَ ٢٠٢ وَاِذَا لَمْ تَأْتِهِمْ بِاٰيَةٍ قَالُوا لَوْلَا اجْتَبَيْتَهَاۜ
قُلْ اِنَّمَٓا اَتَّبِعُ مَا يُوحٰٓى اِلَيَّ مِنْ رَبّ۪يۚ هٰذَا بَصَٓائِرُ مِنْ رَبِّكُمْ
وَهُدًى وَرَحْمَةٌ لِقَوْمٍ يُؤْمِنُونَ ٢٠٣ وَاِذَا قُرِئَ الْقُرْاٰنُ
فَاسْتَمِعُوا لَهُ وَاَنْصِتُوا لَعَلَّكُمْ تُرْحَمُونَ ٢٠٤ وَاذْكُرْ رَبَّكَ
ف۪ي نَفْسِكَ تَضَرُّعاً وَخ۪يفَةً وَدُونَ الْجَهْرِ مِنَ الْقَوْلِ بِالْغُدُوِّ
وَالْاٰصَالِ وَلَا تَكُنْ مِنَ الْغَافِل۪ينَ ٢٠٥ اِنَّ الَّذ۪ينَ عِنْدَ رَبِّكَ
سجدة لَا يَسْتَكْبِرُونَ عَنْ عِبَادَتِه۪ وَيُسَبِّحُونَهُ وَلَهُ يَسْجُدُونَ ٢٠٦

**196**- Bêguman piştevan û arîkarê min Xwedê Teala ye, ew Xwedayê ku Qur’an (ji bo min) hinartiye û yê ku arîkarî û xwedîtiya qencîkaran dike, her ew e.

**197**- Ew (pût) ên ku ji bilî Xwedê hûn wan dihebînin, ew nikarin arîkariya we bikin û nikarin arîkariya xwe jî bikin.

**198**- Eger hûn wan (pûtan) gazî bal riya rast ve bikin, li we guhdar nabin, tu dibînî ku berê wan li te ye, lê belê ew bi xwe nabînin.

**199**- (Resûlê min!) Tu riya lêborîn û karê hêsanî bigire, bi kar û kiryarên qenc ferman bike û berê xwe ji bêfehman bade.

Di ayeta pîroz de bêjeya “Urf” buhurî û me bi bêjeya “Qencî” tercûme kir, mebest ji wê ew lêvbazî û bizav in ku şerî’et û eqil wan rast bibînin.

**200**- Çi dema ji şeytên tasewasek bigihîje te (ku berê te ji Xwedê vegerîne), heman xwe bi Xwedê biparêze. Bêguman Xwedê bihîzer e, zana ye.

**201**- Bêguman ew ên ku xwe (ji xezeba Xwedê Teala) diparêzin, dema ji şeytên tasewasek gihîşte wan, ew (ferman û qedexeyên Xwedê) di bîra xwe tînin, vêca ew riya rast dibînin (bi xwe dihesin û ji gunehan xwe vedikişînin).

**202**- Birayên xirabkaran (ên şeytanî) arîkariya wan dikin û paşê ew qet kêmasiyê jî nakin (her wan diajon ser gunehkariyê).

**203**- (Resûlê min!) Dema te ji bo wan tu mucîze neanî dê bibêjin: De bila te mucîzeyek ji cem xwe baniya. (Ji wan re) Bibêje: Ez tenê didim pey wehya ku ji cem Xwedayê min ji min re hatiye. Ev (ayetên Qur’anê) delîlên zelal in ji Xwedayê we û ji bo qewmekî ku bawerî tînin, riya hîdayet û dilovaniyê ye.

**204**- (Gelî yên ku bawerî anîne!) Dema Qur’an bê xwendin, guhê xwe bidinê û bêdeng bimînin da ku rehmet li we bête kirin.

**205**- Di dilê xwe de, bi zarezar û bi tirs û bi dengekî navincî (di navbera nizmî û bilindiyê de), sibeh û êvarê Xwedayê xwe dibîr bîne û nebe ji yên bêagah.

**206**- Bêguman ew ên li cem Xwedayê te (ku melayîket in) li ser îbadetê Xwedayê xwe xwe qure nakin û Xwedê (ji hemû kêmasiyan) pak didêrin û her jê re secde dibin.



## SÛREYÊ ENFAL

Sûreyê Enfal 75 (heftê û pênc) ayet e. Ayeta 30'em û 36'em li Mekkê daketine. Ayetên din jî li Medînê daketine. Enfal bi daxwaza pirtir e, geljimareya Nefl e. Gava misliman têkoşiyane ji bo ku dînê îslamê belav bikin û xelkê ji riya şaş vegerînin riya rast. Ji xêra vê cîhada pîroz zêdetir, ji wî malê ku ji kafiran wergirtine û ji destxistine re Enfal û xenîme tê gotin. Ji ber ku di ayeta yekem a vî Sûreyî de Ellah Teala dibêje: "Ew xenîmeya ku ji kafiran hatiye sitandin bes ji bo Xwedê û Pêxemberê wî ye" ji vî Sûreyî re "el-Enfal" yanî xenîme û destkeftiyên şer hatiye gotin.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

1- (Resûlê min!) Pirsa destkeftiyên xeni'metê ji te dikin (ka çawa ew ê bêne parvekirin). Bibêje: Hukmê parvekirina xeni'metê aîdê Xwedê û Pêxemberê wî ye. Nexwe eger bi rastî hûn bawermend in ji Xwedê bitirsin (li ser deskeftiyan bi hev nekevin û li ber fermana Xwedê ranebin), navbera xwe xweş bikin û bi gotina Xwedê û peyxemnberê wi bikin.

2- Bêguman ên bawermend, bes ew ên ku dema navê Xwedê tê gotin dilên wan ji tirsan dilerize û dema ku ayetên Xwedê li ser wan tên xwendin, baweriya wan (pê) zêde dibe û her xwe dispêrin Xwedayê xwe,

3- Ew ên ku bi awayê pêdivî nimêj dikin û ji rizqê ku me dayî wan (di riya Xwedê Teala de) xerc dikin.

4. Ha xwediyên van salixan, bawermendên rasteqîn bi xwe ne. Ji bo wan li cem Xwedayê wan mertebe (yên bilind), lêborîn û rizqekî berfireh heye.

5- (Resûlê min! Ev rewşa wan a ku bi hinekan ji wan ne xweş bû ku malê xeni'metê di navbera wan de bê parvekirin;) Mîna wê rewşa wan e ku Xwedayê te, dema te ji mala te bi fermana wehyê (ji bo cîhadê) deranî, digel ku ew bi hinek ji bawermendan ne xweş bû jî (vêca ka çawa ew ji wan re xêr bû ev jî wisa ji wan re xêr e).

6. (Resûlê min!) Piştî aşkera bû ku dê ceng biqewime, her wekî ku ew bi çavên xwe li mirinê temaşe dikin û bi balê ve têne ajotin (der barê cîhadê de) bi te re nîqaşê dikin.

7- (Gelî hevalên Pêxember!) Di bîr bînin dema ku Xwedê Teala, ji du tiştan peymana yekê ji wan (bidestxistina bazirganê Qureyşiyan an jî serkeftina leşkerî) dabû we, we ne ya şer (we bidestxistina karwên) ji xwe re dixwest, lê belê Xwedê Teala dixwest ku dînê îslamê bi fermana xwe misoger bike û dawiyê li kafiran bîne.

8- Da ku Xwedê (bi fermana xwe) heqiyê misoger bike û batilî (şaşî û nerastiyê) ji holê rake, her çiqas sitemkar û muşrîk vê nexwazin jî.

**9-** (Gelî bawermendan!) Bînin bîra xwe, wê dema ku we (di roja Cenga Bedrê de) hawara xwe digihande Xwedê ku arîkariya we bike, vêca Xwedê bersiva we da (û got:) Ez ê hezar melayîketî li pey hev li hawara we bişînim.

Gava Pêxemberê Alîcenab dît ku jimar û hêza muşrikan ji ya hevalên wî pirtir e, berê xwe da qiblê, destên xwe vekir û wiha li ber Xwedê geriya: "Xwedayê min! Peymana ku te daye min bîne cih. Xwedayê min! Heke tu vê civatê ji navê bibî helakê, êdî li ser riwê erdê kesekî ku ji te re îbadetê bike, dê nemîne". Pêxember, seraqetî ev dua dikir. Xwedê bersiva duaya wî da û hezar melayîket şand hawara misilmanan. Ev ayeta ku buhurî jî, vî duayî destnîşan dike.

**10-** Xwedê (melayîket li hawara wan şand) tenê ku bibe mizgîniya serkeftina we û da ku dilê we pê aram û germ bibe. Ev serkeftin her ji cem Xwedê Teala ve ye, ne ku bi hêz û qeweta we ye. Bêguman Xwedê desthilat e, hekîm e.

**11-** Bînin bîra xwe, wê dema (Xwedê) xeweke sivik danî ser çavên we ku ew ewlehiyek bû ji cem Xwedê û ji esmanan baranek bi ser we de barand da ku (bi destnimêj û nimêjê) we pê paqij bike û tasawasa şeytên ji we bibe û da ku dilê we bi hev ve girê bide û lingên we bi cih bike.

**12-** Bînin bîra xwe, dema Xwedayê te peyam ji melayîketan re hinart, (ji wan re got): Bêguman ez bi we re me, vêca wan ên ku bawerî anîn wan piştgerm bikin, ez ê jî tirsê biavêjim dilê wan ên kafir bûne, êdî li stûyê wan û li sertiliyên wan bixin.

اَلْجُزْءُ التَّاسِعُ ١٧٩

اِذْ تَسْتَغ۪يثُونَ رَبَّكُمْ فَاسْتَجَابَ لَكُمْ اَنّ۪ي مُمِدُّكُمْ بِاَلْفٍ
مِنَ الْمَلٰٓئِكَةِ مُرْدِف۪ينَ ﴿٩﴾ وَمَا جَعَلَهُ اللّٰهُ اِلَّا بُشْرٰى
وَلِتَطْمَئِنَّ بِه۪ قُلُوبُكُمْۚ وَمَا النَّصْرُ اِلَّا مِنْ عِنْدِ اللّٰهِۜ اِنَّ اللّٰهَ
عَز۪يزٌ حَك۪يمٌ ﴿١٠﴾ اِذْ يُغَشّ۪يكُمُ النُّعَاسَ اَمَنَةً مِنْهُ وَيُنَزِّلُ
عَلَيْكُمْ مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءً لِيُطَهِّرَكُمْ بِه۪ وَيُذْهِبَ عَنْكُمْ
رِجْزَ الشَّيْطَانِ وَلِيَرْبِطَ عَلٰى قُلُوبِكُمْ وَيُثَبِّتَ بِهِ الْاَقْدَامَۜ
﴿١١﴾ اِذْ يُوح۪ي رَبُّكَ اِلَى الْمَلٰٓئِكَةِ اَنّ۪ي مَعَكُمْ فَثَبِّتُوا الَّذ۪ينَ
اٰمَنُواۜ سَاُلْق۪ي ف۪ي قُلُوبِ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا الرُّعْبَ فَاضْرِبُوا
فَوْقَ الْاَعْنَاقِ وَاضْرِبُوا مِنْهُمْ كُلَّ بَنَانٍۜ ﴿١٢﴾ ذٰلِكَ
بِاَنَّهُمْ شَٓاقُّوا اللّٰهَ وَرَسُولَهُۚ وَمَنْ يُشَاقِقِ اللّٰهَ وَرَسُولَهُ فَاِنَّ
اللّٰهَ شَد۪يدُ الْعِقَابِ ﴿١٣﴾ ذٰلِكُمْ فَذُوقُوهُ وَاَنَّ لِلْكَافِر۪ينَ
عَذَابَ النَّارِ ﴿١٤﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُٓوا اِذَا لَق۪يتُمُ الَّذ۪ينَ
كَفَرُوا زَحْفًا فَلَا تُوَلُّوهُمُ الْاَدْبَارَۚ ﴿١٥﴾ وَمَنْ يُوَلِّهِمْ
يَوْمَئِذٍ دُبُرَهُٓ اِلَّا مُتَحَرِّفًا لِقِتَالٍ اَوْ مُتَحَيِّزًا اِلٰى فِئَةٍ فَقَدْ
بَٓاءَ بِغَضَبٍ مِنَ اللّٰهِ وَمَأْوٰيهُ جَهَنَّمُۜ وَبِئْسَ الْمَص۪يرُ ﴿١٦﴾

**13-** Ev (ezabê ku hatiye serê wan) bi sedema ku wan dijatiya Xwedê û pêxemberê wî dikir. Kî ku dijatiya Xwedê û pêxemberê wî bike, teqez Xwedê ezabdijwar e.

**14-** (Gelî kafiran!) Ha ev ezab ji bo we ye, de vêca wî tehm bikin (û bizanin) bêguman (roja qiyametê) ezabê êgir her ji kafiran re ye.

**15-** Hey gelî yên ku bawerî anîne! Dema hûn (di şer de) bi sîng rastî kafiran hatin, pişta xwe nedin wan (û ji wan nerevin).

**16-** Ew kesê roja cengê pişta xwe bide kafiran –ji bilî ku ji bo fendeki herbê xwe vekişîne yan ji bo xwe bigihîje refekî din (da ku hêza wan zêde bike)- vêca teqez ew musteheqê xezeba Xwedê bûye, cihê wî dojeh e û ew çi cihekî pîs e!

فَلَمْ تَقْتُلُوهُمْ وَلٰكِنَّ اللّٰهَ قَتَلَهُمْۖ وَمَا رَمَيْتَ اِذْ رَمَيْتَ
وَلٰكِنَّ اللّٰهَ رَمٰىۚ وَلِيُبْلِيَ الْمُؤْمِن۪ينَ مِنْهُ بَلَٓاءً حَسَنًاۜ اِنَّ اللّٰهَ
سَم۪يعٌ عَل۪يمٌ ﴿١٧﴾ ذٰلِكُمْ وَاَنَّ اللّٰهَ مُوهِنُ كَيْدِ الْكَافِر۪ينَ
﴿١٨﴾ اِنْ تَسْتَفْتِحُوا فَقَدْ جَٓاءَكُمُ الْفَتْحُۚ وَاِنْ تَنْتَهُوا
فَهُوَ خَيْرٌ لَكُمْۚ وَاِنْ تَعُودُوا نَعُدْۚ وَلَنْ تُغْنِيَ عَنْكُمْ
فِئَتُكُمْ شَيْـًٔا وَلَوْ كَثُرَتْۙ وَاَنَّ اللّٰهَ مَعَ الْمُؤْمِن۪ينَ ﴿١٩﴾
يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُٓوا اَط۪يعُوا اللّٰهَ وَرَسُولَهُ وَلَا تَوَلَّوْا عَنْهُ
وَاَنْتُمْ تَسْمَعُونَۚ ﴿٢٠﴾ وَلَا تَكُونُوا كَالَّذ۪ينَ قَالُوا سَمِعْنَا
وَهُمْ لَا يَسْمَعُونَ ﴿٢١﴾ اِنَّ شَرَّ الدَّوَٓابِّ عِنْدَ اللّٰهِ الصُّمُّ
الْبُكْمُ الَّذ۪ينَ لَا يَعْقِلُونَ ﴿٢٢﴾ وَلَوْ عَلِمَ اللّٰهُ ف۪يهِمْ خَيْرًا
لَاَسْمَعَهُمْۜ وَلَوْ اَسْمَعَهُمْ لَتَوَلَّوْا وَهُمْ مُعْرِضُونَ ﴿٢٣﴾ يَٓا
اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا اسْتَج۪يبُوا لِلّٰهِ وَلِلرَّسُولِ اِذَا دَعَاكُمْ لِمَا
يُحْي۪يكُمْۚ وَاعْلَمُٓوا اَنَّ اللّٰهَ يَحُولُ بَيْنَ الْمَرْءِ وَقَلْبِه۪ وَاَنَّهُٓ
اِلَيْهِ تُحْشَرُونَ ﴿٢٤﴾ وَاتَّقُوا فِتْنَةً لَا تُص۪يبَنَّ الَّذ۪ينَ ظَلَمُوا
مِنْكُمْ خَٓاصَّةًۚ وَاعْلَمُٓوا اَنَّ اللّٰهَ شَد۪يدُ الْعِقَابِ ﴿٢٥﴾



**17-** Vêca (di cengê de) ne we ew dikuştin, lê belê Xwedê ew dikuştin û dema ku te (ey pêxember xîz/sêlik avêt (ser wan û gihîşte serçavên hemûyan) ne te avêt, belê Xwedê ew avêt, da ku Xwedê bi vê (arîkirin û biserxistinê) qencî û dayîneke baş bi bawermendan bike. Bêguman Xwedê bihîzer e, zana ye.

**18-** Ev arîkariya bawermendan, kuştina kafiran û sistkirina hîleya wan, rast e û misoger bûye, bêguman Xwedê lawazkerê hîleyên kafiran e.

**19-** (Gelî kafiran!) Eger hûn (ji bo yên rast û durist) serkeftinê dixwazin, vêca bêguman serkeftin li dûv daxwaza we hat! (We digot: Em ê wan bişkînin lê hûn şikestin). Eger hûn (ji kafiriyê û ji cenga li hemberî Pêxember û mislimana) vegerin (bal arîkariya wan ve) ji we re çêtir e. (Na) eger dîsa hûn (li dijminahiya Pêxember û mislimanan) vegerin, em ê jî vegerin (bal arîkariya wan ve). Bêguman kom û hejmara we tu feydeyê nagihîne we, çiqas hûn gelek bin jî. Bêguman Xwedê Teala digel bawermendan e.

**20-** Hey gelî yên ku bawerî anîne! Guhdariya Xwedê Teala û Pêxemberê wî bikin, berê xwe jê neguherînin û bi duristî guhê xwe bidinê ka çi dibêje.

**21-** Nebin wekî wan (munafiq û cihûy)ên ku got: Me (gotina te) bihîst, lê belê wan (di heqîqeta xwe de) nedibihîst.

**22-** Bêguman li cem Xwedê candarên herî xerab ên ker û lal in, ew ên ku tênagihîjin (nizanin ka çi di xêra wan de ye û çi ne di xêra wan de ye).

**23-** Eger di wan de xêrek hebûya, teqez Xwedê dê heqî bi guhê wan bixista, eger bi guhê wan bixista jî teqez dê pişta xwe bidanê û dê berê xwe ji baweriyê biguhertina.

**24-** Hey gelî yên ku bawerî anîne! Dema Xwedê û peyxember ji bo ya we zinde bike li we gazî kirin bersiva wan bidin. Bizanibin ku Xwedê dikeve navbera meriv û dilê wî (dilê wî dimirîne yan jî diguherîne). Bêguman hûn ê bi bal wî ve bêne komkirin.

**25-** Xwe ji bela û îmtîhaneke wisa biparêzin ku ji we ne bes digihîje yê sitemkar tenê û agahdar bin; bêguman ezabê Xwedê ezabekî pir dijwar e.

وَاذْكُرُٓوا اِذْ اَنْتُمْ قَلٖيلٌ مُسْتَضْعَفُونَ فِى الْاَرْضِ تَخَافُونَ
اَنْ يَتَخَطَّفَكُمُ النَّاسُ فَاٰوٰيكُمْ وَاَيَّدَكُمْ بِنَصْرِهٖ وَرَزَقَكُمْ
مِنَ الطَّيِّبَاتِ لَعَلَّكُمْ تَشْكُرُونَ ﴿٢٦﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذٖينَ اٰمَنُوا
لَا تَخُونُوا اللّٰهَ وَالرَّسُولَ وَتَخُونُٓوا اَمَانَاتِكُمْ وَاَنْتُمْ
تَعْلَمُونَ ﴿٢٧﴾ وَاعْلَمُٓوا اَنَّمَٓا اَمْوَالُكُمْ وَاَوْلَادُكُمْ فِتْنَةٌ
وَاَنَّ اللّٰهَ عِنْدَهُٓ اَجْرٌ عَظٖيمٌ ﴿٢٨﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذٖينَ اٰمَنُٓوا اِنْ
تَتَّقُوا اللّٰهَ يَجْعَلْ لَكُمْ فُرْقَانًا وَيُكَفِّرْ عَنْكُمْ سَيِّـَٔاتِكُمْ
وَيَغْفِرْ لَكُمْ وَاللّٰهُ ذُو الْفَضْلِ الْعَظٖيمِ ﴿٢٩﴾ وَاِذْ يَمْكُرُ بِكَ
الَّذٖينَ كَفَرُوا لِيُثْبِتُوكَ اَوْ يَقْتُلُوكَ اَوْ يُخْرِجُوكَ وَيَمْكُرُونَ
وَيَمْكُرُ اللّٰهُ وَاللّٰهُ خَيْرُ الْمَاكِرٖينَ ﴿٣٠﴾ وَاِذَا تُتْلٰى عَلَيْهِمْ
اٰيَاتُنَا قَالُوا قَدْ سَمِعْنَا لَوْ نَشَٓاءُ لَقُلْنَا مِثْلَ هٰذَٓا اِنْ هٰذَٓا
اِلَّٓا اَسَاطٖيرُ الْاَوَّلٖينَ ﴿٣١﴾ وَاِذْ قَالُوا اللّٰهُمَّ اِنْ كَانَ
هٰذَا هُوَ الْحَقَّ مِنْ عِنْدِكَ فَاَمْطِرْ عَلَيْنَا حِجَارَةً مِنَ
السَّمَٓاءِ اَوِ ائْتِنَا بِعَذَابٍ اَلٖيمٍ ﴿٣٢﴾ وَمَا كَانَ اللّٰهُ لِيُعَذِّبَهُمْ
وَاَنْتَ فٖيهِمْ وَمَا كَانَ اللّٰهُ مُعَذِّبَهُمْ وَهُمْ يَسْتَغْفِرُونَ ﴿٣٣﴾

**26**- (Gelî muminan!) Bînin bîra xwe wê dema ku hûn li erdê (li Mekkê) bindest û kêm bûn, hûn ditirsiyan ku xelk (muşrikê Mekkê) bi lez we bigirin û birevînin. Vêca (Xwedê Teala) hûn (li Medînê) hewandin û bi arîkariya xwe (roja Bedrê) piştgiriya we kir û rizqê pak û paqij da we da ku qene hûn şêkiriyê bikin.

**27**- Hey gelî yên ku bawerî anîne! Li Xwedê û Pêxember (bi nekirina taetê û kirina gunehan) xiyanetê nekin û xiyanetê li emanetê li cem xwe jî nekin digel ku hûn dizanin ew emanet in.

**28**- Agahdar bin, bêguman malê we û zarokên we ji bo we bes îmtîhan û ceribandin in. Bêguman xelata mezin her li cem Xwedê ye (vêca bila mal û zarokên we wê xelatê ji destê we dernexin).

**29**- Hey gelî yên ku bawerî anîne! Eger hûn ji Xwedê bitirsin (û hay ji fermanên wî hebin), (Xwedê) dê fehmeke wisa bide we ku hûn ê pê qencî û neqenciyê ji hev veqetînin, dê sûcên we veşêre û li gunehên we jî bibore. Bes Xwedê ye xwediyê kerema mezin.

**30**- (Resûlê min! Di bîr bîne) dema wan ên kafir dek û fen li te dikirin da ku te bigirin, girêbidin, an te bikujin, an jî te (ji Mekkê) derînin. Dema wan fen û hîle li te kirin Xwedê jî dek û fenên wan pûç kirin û Xwedê ji her kesî bêhtir fen û fendan pûç dike.

**31**- Dema ku ayetên me ji wan (kafiran) re dihat xwendin, gotin: (Erê ya te xwendî) me bihîst, eger me viyabûya teqez em jî dikarin weke van ayetan bibêjin û ev Qur'an ji çîrokên pêşiyan pê ve ne tiştekî din e.

**32**- (Di bîr bîne) Wê dema wan kafiran got: Xwedayê me! Eger ev Qur'an heq be û ji cem te hatibe, ji esmên keviran li ser me bibarîne yan jî ezabekî dijwar ji bo me bîne!

**33**- (Resûlê min!) Heta tu li nav wan bî, Xwedê Teala dê ezab nede wan. Her wiha heta ku ew lêborîna gunehên xwe bixwazin, Xwedê Teala ezab nade wan.

وَمَا لَهُمْ اَلَّا يُعَذِّبَهُمُ اللّٰهُ وَهُمْ يَصُدُّونَ عَنِ الْمَسْجِدِ
الْحَرَامِ وَمَا كَانُوا اَوْلِيَٓاءَهُ اِنْ اَوْلِيَٓاؤُهُ اِلَّا الْمُتَّقُونَ
وَلٰكِنَّ اَكْثَرَهُمْ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٣٤﴾ وَمَا كَانَ صَلَاتُهُمْ
عِنْدَ الْبَيْتِ اِلَّا مُكَٓاءً وَتَصْدِيَةً فَذُوقُوا الْعَذَابَ
بِمَا كُنْتُمْ تَكْفُرُونَ ﴿٣٥﴾ اِنَّ الَّذِينَ كَفَرُوا يُنْفِقُونَ
اَمْوَالَهُمْ لِيَصُدُّوا عَنْ سَبِيلِ اللّٰهِ فَسَيُنْفِقُونَهَا ثُمَّ تَكُونُ
عَلَيْهِمْ حَسْرَةً ثُمَّ يُغْلَبُونَ وَالَّذِينَ كَفَرُوا اِلٰى جَهَنَّمَ
يُحْشَرُونَ ﴿٣٦﴾ لِيَمِيزَ اللّٰهُ الْخَبِيثَ مِنَ الطَّيِّبِ وَيَجْعَلَ
الْخَبِيثَ بَعْضَهُ عَلٰى بَعْضٍ فَيَرْكُمَهُ جَمِيعًا فَيَجْعَلَهُ فِي
جَهَنَّمَ اُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الْخَاسِرُونَ ﴿٣٧﴾ قُلْ لِلَّذِينَ كَفَرُوا
اِنْ يَنْتَهُوا يُغْفَرْ لَهُمْ مَا قَدْ سَلَفَ وَاِنْ يَعُودُوا فَقَدْ
مَضَتْ سُنَّتُ الْاَوَّلِينَ ﴿٣٨﴾ وَقَاتِلُوهُمْ حَتّٰى لَا تَكُونَ
فِتْنَةٌ وَيَكُونَ الدِّينُ كُلُّهُ لِلّٰهِ فَاِنِ انْتَهَوْا فَاِنَّ
اللّٰهَ بِمَا يَعْمَلُونَ بَصِيرٌ ﴿٣٩﴾ وَاِنْ تَوَلَّوْا فَاعْلَمُوا اَنَّ
اللّٰهَ مَوْلٰيكُمْ نِعْمَ الْمَوْلٰى وَنِعْمَ النَّصِيرُ ﴿٤٠﴾

وَاعْلَمُوا

**34**- Erê ma çiyê wan heye ku nehêle Xwedê ezab bide wan? Digel ku ew riya mala birûmet (riya Ka'bê) li ber xelkê digirin (nahêlin ku bawermend Mescîdul Heramê tewaf bikin). Ew bi xwe jî ne arîkar û xwediyê Ka'bê ne. Ji yê muteqî pê ve xwediyê Ka'bê tun in. Lê belê pirê wan (vê) nizanin.

**35**- Nimêja wan (pûtperestan) li cem Mala Xwedê (Kebê) ji fîtik û çepkan pê ve ne tiştekî din bû. Vêca (gelî kafiran!) ji ber vê kufra xwe de ezab tehm bikin!

Li gorî rîwayetan jin û mêrên muşrik xwe rût û tazî dikirin û Beyt wisa tewaf dikirin; di nêv tewafê de jî wek niyaz û dua li cepkan didan û dikwîtandin/difikandin. Vêca ayetê jî ev kirina wan destnîşan kiriye.

**36**- Bêguman ew ên ku kafir bûne, malên xwe xerc dikin da ku riya (dînê) Xwedê li ber xelxê bigirin û ew ê hê jî xerc bikin. Paşê ev ê ji wan re bibe jan (û hesret)a dil, di dawiyê de jî ew ê têk herin û bêne şikandin. Ew ên ku kafir bûne bi bal dojehê (cehenemê) ve dê bêne komkirin.

Kafiran di şerê bedrê û yên pey wê de temamê serweta xwe xerç kirin da ku nehêlin îslam rohniya xwe bide cîhanê û rê li berê bigrin. Lêbelê di paşîkê de zora wê nebirin, ew şikestin û hemû perîşan bûn.

**37**- Da ku Xwedê baş û xeraban (misliman û kafiran) ji hev veqetîne û hin xeraban jî deyne ser hinan, vêca tevan bi ser hev de kom bike û paşê di cehenemê de werke. Yên xesaret kirin ha ew bi xwe ne.

**38**- (Resûlê min!) Ji yên kafir bûne re bibêje: Eger ew dev (ji neyartiya Xwedê û Pêxember) berdin (û bawerî bînin), tiştê borî li wan nayê girtin. Na, eger dîsa ew vegerin (şerê Pêxember û dijmintiya wî), vêca sond be, adetê Xwedê der barê yên beriya wan de derbas bûye, (ka çawa Xwedê yên berê ji holê rakirin her wisa dê van jî ji holê rake).

**39**- Hûn (gelî mislimanan!) bi kafiran re şer bikin da ku riya îslamê (li ber mislimanan) neyête girtin û da dînê Xwedê bibe serpişka hemû dînan, vêca eger (kafiran) dev ji dijminatî, şer û kafiriyê berdan (û misliman bûn) bêguman tiştê ew dikin Xwedê Teala dibîne.

**40**- Eger wan (dest ji kirinên xwe bernedan û) pişta xwe da we, êdî hûn bizanin ku Xwedê arîkar û piştevanê we ye û Ew çi xweş piştevan û çi xweş arîkar e!

وَاعْلَمُوا اَنَّمَا غَنِمْتُمْ مِنْ شَيْءٍ فَاَنَّ لِلّٰهِ خُمُسَهُ وَلِلرَّسُولِ
وَلِذِي الْقُرْبٰى وَالْيَتَامٰى وَالْمَسَاكِينِ وَابْنِ السَّبِيلِ اِنْ
كُنْتُمْ اٰمَنْتُمْ بِاللّٰهِ وَمَٓا اَنْزَلْنَا عَلٰى عَبْدِنَا يَوْمَ الْفُرْقَانِ
يَوْمَ الْتَقَى الْجَمْعَانِ وَاللّٰهُ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ ﴿٤١﴾ اِذْ
اَنْتُمْ بِالْعُدْوَةِ الدُّنْيَا وَهُمْ بِالْعُدْوَةِ الْقُصْوٰى وَالرَّكْبُ
اَسْفَلَ مِنْكُمْ وَلَوْ تَوَاعَدْتُمْ لَاخْتَلَفْتُمْ فِي الْمِيعَادِ
وَلٰكِنْ لِيَقْضِيَ اللّٰهُ اَمْرًا كَانَ مَفْعُولًا لِيَهْلِكَ مَنْ
هَلَكَ عَنْ بَيِّنَةٍ وَيَحْيٰى مَنْ حَيَّ عَنْ بَيِّنَةٍ وَاِنَّ اللّٰهَ
لَسَمِيعٌ عَلِيمٌ ﴿٤٢﴾ اِذْ يُرِيكَهُمُ اللّٰهُ فِي مَنَامِكَ قَلِيلًا
وَلَوْ اَرٰيكَهُمْ كَثِيرًا لَفَشِلْتُمْ وَلَتَنَازَعْتُمْ فِي الْاَمْرِ
وَلٰكِنَّ اللّٰهَ سَلَّمَ اِنَّهُ عَلِيمٌ بِذَاتِ الصُّدُورِ ﴿٤٣﴾ وَاِذْ
يُرِيكُمُوهُمْ اِذِ الْتَقَيْتُمْ فِي اَعْيُنِكُمْ قَلِيلًا وَيُقَلِّلُكُمْ
فِي اَعْيُنِهِمْ لِيَقْضِيَ اللّٰهُ اَمْرًا كَانَ مَفْعُولًا وَاِلَى اللّٰهِ
تُرْجَعُ الْاُمُورُ ﴿٤٤﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذِينَ اٰمَنُوا اِذَا لَقِيتُمْ فِئَةً
فَاثْبُتُوا وَاذْكُرُوا اللّٰهَ كَثِيرًا لَعَلَّكُمْ تُفْلِحُونَ ﴿٤٥﴾

**41**- Agahdar bin, bêguman çi destkeftiyeke ku (bi cîhadê ji kafiran) we bi dest xistibe, vêca birastî pêncyeka wê ji bo Xwedê, ji bo Pêxember û malbata Pêxember e, ji bo sêwî, belengaz û rêwiyan e, eger bi rastî bi Xwedê û bi ya ku me ji bo bendeyê xwe roja ji hev veqetandina heq û batilî aniye xwarê û roja ku her du celeb (misliman û kafir li Bedrê) hatin hemberî hev we bawerî anîbe. Xwedê teqez li ser her tiştî qadir e.

**42**- Di bîr bînin dema (roja Cenga Bedrê) hûn li kenarê newala nêzikî Medîneyê û ew (qureyşî) jî li rexê newala dûr bûn. Karwan(ê qureyşiyan) jî di biniya we re (li lêva Deryaya Sor) bû. Eger we (we û ew ji bo şerekî bi vî awayî) civan dabûna hev, hûn ê di civanê de ketibûna îxtilafê (bi vî awayî hûn nedihatin hemberî hev, lewra kêmahiya we dê we sist bikira û tirsa Pêxember a di dilê wan de jî dê wan sist bikira). Lê belê, ji bo ku Xwedê (bi serkeftina misliman û têkçûna kafiran) rewşeke pêwîstbûyî bîne cih, bêcivan, li vî cihî hûn anîn hemberî hev, da ku bi belge û nîşan ê kafirbûyî kafir bibe û da ku bi belge û nîşân ê bawerî anî, bawerî bîne. Bêguman Xwedê Teala bihîzer e, zana ye.

**43**- Bînin bîra xwe, dema di xewnê de Xwedê Teala ew (kafir) ji te re kêm nîşan dan, eger ew bi piranî nîşanî te dabûna, teqez hûn ê bitirs û naçar bimana û hûn ê der barê karê (şerî) de ketibûna îxtilafê, lê belê Xwedê Teala hûn (ji vê yekê) reha kirin. Bêguman Xwedê bi ya di sîngan de veşartî ye, agahdar e.

**44**- Bînin bîra xwe, wê dema (di qada şer de) hûn hatin hemberî hev. Ji bo ya ku Xwedê dixwest bîne cih (Xwedê) ew li ber çavên we kêm nîşan dan (da ku cesareta we zêde bibe) û hûn jî li ber çavên wan kêm nîşan dan (ji bo ku ew ji xwe piştrast bin da ku karê xwe bi duristî nekin). Hemû kar û bar, her bi bal Xwedê ve dizivirin.

**45**- Hey gelî yên ku bawerî anîne! Dema hûn (di qada şer de) hatin hemberî celebekî kafir, xwe ragirin û Xwedê pir di bîr bînin da ku hûn bi ser kevin (û neyarên xwe têk bibin).

Di dema cengê de li ber Xwedê bigerin, ji wî hawar û arîkariyê bixwazin û bila çavên we li riya arîkariya wî be. Tu sedem tune ye ku nehêle mirovek Xwedê di bîra xwe bîne. Nexasim gava şer, karesat, musîbet û bela biqewimin, yekser divê mirov xwe bavêje ber dergehê Xwedê û arîkariyê jê bixwaze.

وَاَطِيعُوا اللّٰهَ وَرَسُولَهُ وَلَا تَنَازَعُوا فَتَفْشَلُوا وَتَذْهَبَ
رِيحُكُمْ وَاصْبِرُوا اِنَّ اللّٰهَ مَعَ الصَّابِرِينَ ﴿٤٦﴾ وَلَا تَكُونُوا
كَالَّذِينَ خَرَجُوا مِنْ دِيَارِهِمْ بَطَرًا وَرِئَاءَ النَّاسِ
وَيَصُدُّونَ عَنْ سَبِيلِ اللّٰهِ وَاللّٰهُ بِمَا يَعْمَلُونَ مُحِيطٌ ﴿٤٧﴾
وَاِذْ زَيَّنَ لَهُمُ الشَّيْطَانُ اَعْمَالَهُمْ وَقَالَ لَا غَالِبَ لَكُمُ
الْيَوْمَ مِنَ النَّاسِ وَاِنِّي جَارٌ لَكُمْ فَلَمَّا تَرَاءَتِ الْفِئَتَانِ
نَكَصَ عَلٰى عَقِبَيْهِ وَقَالَ اِنِّي بَرِيٓءٌ مِنْكُمْ اِنِّي اَرٰى مَا لَا
تَرَوْنَ اِنِّي اَخَافُ اللّٰهَ وَاللّٰهُ شَدِيدُ الْعِقَابِ ﴿٤٨﴾ اِذْ يَقُولُ
الْمُنَافِقُونَ وَالَّذِينَ فِي قُلُوبِهِمْ مَرَضٌ غَرَّ هٰٓؤُلَٓاءِ دِينُهُمْ
وَمَنْ يَتَوَكَّلْ عَلَى اللّٰهِ فَاِنَّ اللّٰهَ عَزِيزٌ حَكِيمٌ ﴿٤٩﴾ وَلَوْ
تَرٰٓى اِذْ يَتَوَفَّى الَّذِينَ كَفَرُوا الْمَلٰٓئِكَةُ يَضْرِبُونَ
وُجُوهَهُمْ وَاَدْبَارَهُمْ وَذُوقُوا عَذَابَ الْحَرِيقِ ﴿٥٠﴾ ذٰلِكَ
بِمَا قَدَّمَتْ اَيْدِيكُمْ وَاَنَّ اللّٰهَ لَيْسَ بِظَلَّامٍ لِلْعَبِيدِ ﴿٥١﴾
كَدَأْبِ اٰلِ فِرْعَوْنَ وَالَّذِينَ مِنْ قَبْلِهِمْ كَفَرُوا بِاٰيَاتِ
اللّٰهِ فَاَخَذَهُمُ اللّٰهُ بِذُنُوبِهِمْ اِنَّ اللّٰهَ قَوِيٌّ شَدِيدُ الْعِقَابِ ﴿٥٢﴾

ذٰلِكَ

**46**- (Gelî bawermendan!) Bi gotina Xwedê û pêxemberê wî bikin, bi hev re miqersiyê mekin. Paşê hûn ê sist bibin, vêca hêza we dê here û (li hember rûdanan) xwe ragirin, bêguman Xwedê digel xweragir û sebirkêşan e.

Di ayeta pîroz de bêjeya "Rîh" derbas bû, maneya wê ya bingehîn **ba** ye. Lêbelê di maneya xwe ya mecazî de bi daxwaza hêz, arîkarî, dewlet jî tê. Me jî, maneya yekem tercîh kir. Rast e, milletekî ku wî dil hebe bibe xwedî dewlet; cih û war divê di nêv xwe de tifaqa xwe pêk bîne, rê li berberî û çavnebariyê bigre, ji hev hez bike û xêra xwe bixwaze. Heke van mercan bîne cih, wê çaxê qabil e ku bibe xwedî war û dewlet. Eger van neke, ew jî nabe!

**47**- Nebin wekî wan (kafir)ên ku ji çavsorî û ji bo nav û dengê xwe ji mala xwe derdikevin û riya (dînê) Xwedê li ber xelkê digirin. Bêguman Xwedê Teala bi ya ku ew dikin agahdar e.

Serkarwan Ebû Sufyan, çi dema ji xeterê xilas bû, ji leşkerên qureyşiyan re xeber şand da ku vegerin mala xwe. Lêbelê Ebû Cehil got: Sond be, heta ku em neçin bedrê û li wirê meya (şeraba) xwe venexwin, heta ku cariye/keçik li dora me li sazê nedin û stranan nebêjin û heta ku erebên dorhêla me dengê me nebihîzin em ê venegerin. Her çiqas bi egîdî hatin bedrê, lê di şûna şeraba serkeftinê de ava mirinê vexwarin. Cariyan di şûna stranan de kirin zarîn û fîxan. Ereb di şûna ku zikê xwe yê birsî ji xwarina wan têr bikin, bi agirê dojehê têr kirin. Ha ev ayet fermanê li bawermendan dike da ku wekî wan serxweve neçin, belkî bibin xweparêz û xwe bispêrin Xwedê Teala.

**48**- Wê dema şeytên kirinên wan ji wan re xemilandin û (ji wan re) got: Îro ji mirovan, tu kes zora we nabe û bêguman ez piştevan û arîkarê we me. Lê belê çi dema ku her du celeb (bawermend û kafir) ketin hemberî hev, (şeytan) bi ser paşpehniya xwe ve zivirî û got: Ez ji we dûr im, bêguman ya ku ez dibînim hûn nabînin, bêguman ez ji Xweda ditirsim û Xweda cezadijwar e.

**49**- Dema munafiqan û ew ên ku di dilê wan de nexweşî(ya şirkê) heye (der barê we de) digotin: Ew (misliman)ên ha, dînê wan ew bi ser xwe ve birine. Kî ku xwe bispêre Xwedê, vêca bêguman Xwedê di karê xwe de serkeftî ye, hekîm e.

**50**- (Resûlê min!) Eger tu bibînî wê dema melayîket rihê wan ên ku kafir in distînin û li ber û pişta wan dixin (tu yê dîmenekî bitirs bibînî) û (ji wan re dibêjin) de ezabê dojehê biçêjin!

**51**- Ha ev (ezab) e, bi sedem a ku destê we kirî û bêguman Xwedê Teala li bendeyê xwe tu zilmê nake.

**52**- Wan jî, wekî Firewn û yên beriya Firewn nîşan û ayetên Xwedê Teala înkar kirin, vêca Xwedê Teala bi sebeb gunehên wan ew hingaftin, bêguman Xwedê Teala xwedanhêz e, azardijwar e.

ذٰلِكَ بِاَنَّ اللّٰهَ لَمْ يَكُ مُغَيِّرًا نِعْمَةً اَنْعَمَهَا عَلٰى قَوْمٍ حَتّٰى
يُغَيِّرُوا مَا بِاَنْفُسِهِمْ وَاَنَّ اللّٰهَ سَمِيعٌ عَلِيمٌ ﴿٥٣﴾ كَدَاْبِ
اٰلِ فِرْعَوْنَ وَالَّذِينَ مِنْ قَبْلِهِمْ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِ رَبِّهِمْ
فَاَهْلَكْنَاهُمْ بِذُنُوبِهِمْ وَاَغْرَقْنَا اٰلَ فِرْعَوْنَ وَكُلٌّ كَانُوا
ظَالِمِينَ ﴿٥٤﴾ اِنَّ شَرَّ الدَّوَابِّ عِنْدَ اللّٰهِ الَّذِينَ كَفَرُوا فَهُمْ
لَا يُؤْمِنُونَ ﴿٥٥﴾ اَلَّذِينَ عَاهَدْتَ مِنْهُمْ ثُمَّ يَنْقُضُونَ عَهْدَهُمْ
فِي كُلِّ مَرَّةٍ وَهُمْ لَا يَتَّقُونَ ﴿٥٦﴾ فَاِمَّا تَثْقَفَنَّهُمْ فِي الْحَرْبِ فَشَرِّدْ
بِهِمْ مَنْ خَلْفَهُمْ لَعَلَّهُمْ يَذَّكَّرُونَ ﴿٥٧﴾ وَاِمَّا تَخَافَنَّ مِنْ
قَوْمٍ خِيَانَةً فَانْبِذْ اِلَيْهِمْ عَلٰى سَوَاءٍ اِنَّ اللّٰهَ لَا يُحِبُّ الْخَائِنِينَ
﴿٥٨﴾ وَلَا يَحْسَبَنَّ الَّذِينَ كَفَرُوا سَبَقُوا اِنَّهُمْ لَا يُعْجِزُونَ
﴿٥٩﴾ وَاَعِدُّوا لَهُمْ مَا اسْتَطَعْتُمْ مِنْ قُوَّةٍ وَمِنْ رِبَاطِ الْخَيْلِ
تُرْهِبُونَ بِهِ عَدُوَّ اللّٰهِ وَعَدُوَّكُمْ وَاٰخَرِينَ مِنْ دُونِهِمْ
لَا تَعْلَمُونَهُمْ اَللّٰهُ يَعْلَمُهُمْ وَمَا تُنْفِقُوا مِنْ شَيْءٍ فِي سَبِيلِ اللّٰهِ
يُوَفَّ اِلَيْكُمْ وَاَنْتُمْ لَا تُظْلَمُونَ ﴿٦٠﴾ وَاِنْ جَنَحُوا لِلسَّلْمِ
فَاجْنَحْ لَهَا وَتَوَكَّلْ عَلَى اللّٰهِ اِنَّهُ هُوَ السَّمِيعُ الْعَلِيمُ ﴿٦١﴾

**53**- Ev a ku Xwedê Teala bi serê wan de anî bi sedema gunehên wan bû, lewra bêguman heta qewmek qencî û kerema ku Xwedê bi wan re kirî xwe bi xwe neguherînin Xwedê jî qenciya li ser wan naguherîne. Bêguman Xwedê Teala bihîzer e, zana ye.

**54**- Wan jî wekî malbata Firewn û yên beriya wan, bi ayetên Xwedayê xwe bawerî neanî. Me jî, ji ber gunehên wan, ew jî helak kirin û Me famîleya Firewn (di deryayê de) xeniqand. Bêguman ew hemû (Firewn û malbata wî û kuştiyên qureyşiyan) zalim bûn.

**55**- Bêguman li cem Xwedê candarên herî xerab ew ên ku kafir in, vêca ew baweriyê (bi Xwedê) nayînin.

**56**- Ew ên ku te soz û peyman ji wan standiye, paşê di her carê de soza xwe dişkînin û ew ji encama vê sozşikandinê natirsin.

**57**- Çi dema tu li ser wan serdest û deshilat bibî, vêca derbeke wisan li wan bixe da ku yên di pey wan re ji vê derbê ders bigirin.

**58**- Çi dema tu ji xiyaneta miletekî (ku te bi wan re peyman çêkiriye, ku peymana xwe bişkînin) bitirsî, wan agahdar bike ku peyman di navbera me de nema. Bêguman Xwedê Teala ji xayînan hez nake.

**59**- Bila ew ên kafir bûne (ku roja Bedrê ji kuştin û dîlbûnê rizgar bûne) guman nekin ku ew ji ezabê Xwedê Teala xelas bûne. Bêguman ew me naçar nakin (ku em wan nedine ezabê).

**60**- Hûn jî (gelî bawermendan), çiqas ku ji we bê, ji hêz û hespên girêdayî li hember wan (dijminên xwe) xwe amade bikin. Ku hûn bi wê (hêz û hespên girêdayî) dijminê Xwedê û dijminê xwe û hin dijminên din jî ku hûn bi wan nizanin, belê Xwedê bi wan dizane, çavtirsandî bikin. Çi tiştê di riya Xwedê de hûn xerc bikin, (bêkêmasî) xêra wê dê ji we re bê dayîn û qet neheqî li we nayê kirin.

Di vê ayeta pîroz de, Ellah Teala emir li bawermendan dike ku li hemberî neyaran hêzekê amade bikin. Ji hêzê mebest ew navgîn in ku bi wan mirov zora dijminê xwe bibe û wî bişkîne.

**61**- Eger ew (dijmin) ber bi aştiyê ve hatin, vêca tu jî ber bi wê ve here û xwe bispêre Xwedê Teala. Bêguman Xwedê Teala, her ew e yê bihîzer, yê zana.

وَاِنْ يُرٖيدُٓوا اَنْ يَخْدَعُوكَ فَاِنَّ حَسْبَكَ اللّٰهُۜ هُوَ الَّذٖٓى اَيَّدَكَ
بِنَصْرِهٖ وَبِالْمُؤْمِنٖينَۙ ﴿٦٢﴾ وَاَلَّفَ بَيْنَ قُلُوبِهِمْۜ لَوْ اَنْفَقْتَ مَا
فِى الْاَرْضِ جَمٖيعًا مَٓا اَلَّفْتَ بَيْنَ قُلُوبِهِمْ وَلٰكِنَّ اللّٰهَ اَلَّفَ
بَيْنَهُمْۜ اِنَّهُ عَزٖيزٌ حَكٖيمٌ ﴿٦٣﴾ يَٓا اَيُّهَا النَّبِىُّ حَسْبُكَ اللّٰهُ
وَمَنِ اتَّبَعَكَ مِنَ الْمُؤْمِنٖينَ ﴿٦٤﴾ يَٓا اَيُّهَا النَّبِىُّ حَرِّضِ الْمُؤْمِنٖينَ
عَلَى الْقِتَالِۜ اِنْ يَكُنْ مِنْكُمْ عِشْرُونَ صَابِرُونَ يَغْلِبُوا مِائَتَيْنِۚ
وَاِنْ يَكُنْ مِنْكُمْ مِائَةٌ يَغْلِبُٓوا اَلْفًا مِنَ الَّذٖينَ كَفَرُوا
بِاَنَّهُمْ قَوْمٌ لَا يَفْقَهُونَ ﴿٦٥﴾ اَلْـٰٔنَ خَفَّفَ اللّٰهُ عَنْكُمْ وَعَلِمَ
اَنَّ فٖيكُمْ ضَعْفًاۜ فَاِنْ يَكُنْ مِنْكُمْ مِائَةٌ صَابِرَةٌ يَغْلِبُوا مِائَتَيْنِۚ
وَاِنْ يَكُنْ مِنْكُمْ اَلْفٌ يَغْلِبُٓوا اَلْفَيْنِ بِاِذْنِ اللّٰهِۜ وَاللّٰهُ مَعَ
الصَّابِرٖينَ ﴿٦٦﴾ مَا كَانَ لِنَبِىٍّ اَنْ يَكُونَ لَهُٓ اَسْرٰى حَتّٰى
يُثْخِنَ فِى الْاَرْضِۜ تُرٖيدُونَ عَرَضَ الدُّنْيَاۗ وَاللّٰهُ
يُرٖيدُ الْاٰخِرَةَۜ وَاللّٰهُ عَزٖيزٌ حَكٖيمٌ ﴿٦٧﴾ لَوْلَا كِتَابٌ مِنَ اللّٰهِ
سَبَقَ لَمَسَّكُمْ فٖيمَٓا اَخَذْتُمْ عَذَابٌ عَظٖيمٌ ﴿٦٨﴾ فَكُلُوا مِمَّا
غَنِمْتُمْ حَلَالًا طَيِّبًاۘ وَاتَّقُوا اللّٰهَۜ اِنَّ اللّٰهَ غَفُورٌ رَحٖيمٌ ﴿٦٩﴾

يَٓا اَيُّهَا

**62**- Eger ew (bi aştiyê) dixwazin te bixapînin, vêca bêguman Xwedê Teala her besî te ye, ew e yê ku bi arîkariya xwe û bi piştevaniya mumînan tu bi hêz kirî.

**63**- (Xwedê Teala) dilê wan (Ews û Xezreciyan) gihandine hev, eger te çi tiştê li ser erdê heye, tev (di vê rê de) xerc bikira jî, te yê nikarîbûya dilên wan bigihanda hev. Lê belê Xwedê Teala ew gihandine hev. Bêguman Xwedê Teala di karê xwe de serkeftî û karbinecih e.

Li Medîna Munewwer di neqeba famila Ews û Xezrec de dijminahiyeke tûj û berberiyeke bêeman hebû. Di nêv wan de şerên xwînrijê qewimîbûn û pir giregirên wan hatibûn kuştin. Ji demeke dirêj ve li pey hev digeriyan da ku ji hev tol û heyfê hilînin. Çi dema Xwedê bi mislimanbûnê rûmet da wan, êdî kîn û dijminahî jî, ji dilên wan deranî, ji dilûcan li hev hatin, hevûdu, hemêz kirin. Ha ayeta ku li jor buhurî jî ev yek destnîşan kiriye.

**64**- Resûlê min! Xwedê besî te ye û besî wan bawermendên ku dane pey te jî.

**65**- Resûlê min! Li hember (kafiran) nav di bawermendan bide, wan li ser şer germ bike. Eger ji we bîst kesên sebirkêş hebin ew ê zora du sed kesên (kafir), eger ji we sed kes hebin ew ê zora hezar kesê kafir bibin. Ev rewş bi sedema ku ew bi rastî qewmekî tênegihêj in (vêca li hember bawermendan xwe ranagirin).

**66**- Ha vêga, Xwedê Teala barê we sivik kir û dizanibû ku di we de (li hemberî şer) qelsiyek heye. Nexwe, eger ji we sed kesên sebirkêş hebin, ew yê zora du sed kesên (kafir) bibin. Eger ji we hezar kes hebin, ew -bi destûra Xwedê- dê zora du hezar kesên (kafir) bibin. Xwedê Teala teqez digel sebirkêşan e.

**67**- Herçî pêxemberek ku di destê wî de êsîr hebin, heta ew şerekî dijwar li ser erdê neke, ne babetê wî ye (ku bedêlî azadiya wan, fidyeyê ji wan wergire). Hûn (bi wergirtina fidyeyê) pertalê dinyayê divên û Xwedê ji bo we xêra axretê divê. Xwedê di karê xwe de serdest û karbinecih e.

**68**- Eger ne ji fermana Xwedê ya derbasbûyî bûya, bi sedema wê gerewa (fidyeya) ku we ji êsîran wergirtiye dê ezabekî mezin we bihingafta.

**69**- Êdî ji wê xeni'meta ku we bi dest xistiye bi helalî û pakî bixwin. Ji Xwedê bitirsin, bêguman Xwedê gunehveşêr û dilovîn e.

يَٓا اَيُّهَا النَّبِيُّ قُلْ لِمَنْ فٖٓي اَيْدٖيكُمْ مِنَ الْاَسْرٰٓى اِنْ يَعْلَمِ اللّٰهُ
فٖي قُلُوبِكُمْ خَيْرًا يُؤْتِكُمْ خَيْرًا مِمَّٓا اُخِذَ مِنْكُمْ وَيَغْفِرْ لَكُمْۜ
وَاللّٰهُ غَفُورٌ رَحٖيمٌ ﴿٧٠﴾ وَاِنْ يُرٖيدُوا خِيَانَتَكَ فَقَدْ خَانُوا
اللّٰهَ مِنْ قَبْلُ فَاَمْكَنَ مِنْهُمْۜ وَاللّٰهُ عَلٖيمٌ حَكٖيمٌ ﴿٧١﴾ اِنَّ الَّذٖينَ
اٰمَنُوا وَهَاجَرُوا وَجَاهَدُوا بِاَمْوَالِهِمْ وَاَنْفُسِهِمْ فٖي سَبٖيلِ اللّٰهِ
وَالَّذٖينَ اٰوَوْا وَنَصَرُٓوا اُو۬لٰٓئِكَ بَعْضُهُمْ اَوْلِيَٓاءُ بَعْضٍۜ وَالَّذٖينَ
اٰمَنُوا وَلَمْ يُهَاجِرُوا مَا لَكُمْ مِنْ وَلَايَتِهِمْ مِنْ شَيْءٍ حَتّٰى يُهَاجِرُواۚ
وَاِنِ اسْتَنْصَرُوكُمْ فِي الدّٖينِ فَعَلَيْكُمُ النَّصْرُ اِلَّا عَلٰى قَوْمٍ بَيْنَكُمْ
وَبَيْنَهُمْ مٖيثَاقٌۜ وَاللّٰهُ بِمَا تَعْمَلُونَ بَصٖيرٌ ﴿٧٢﴾ وَالَّذٖينَ كَفَرُوا
بَعْضُهُمْ اَوْلِيَٓاءُ بَعْضٍۜ اِلَّا تَفْعَلُوهُ تَكُنْ فِتْنَةٌ فِي الْاَرْضِ وَفَسَادٌ
كَبٖيرٌۜ ﴿٧٣﴾ وَالَّذٖينَ اٰمَنُوا وَهَاجَرُوا وَجَاهَدُوا فٖي سَبٖيلِ
اللّٰهِ وَالَّذٖينَ اٰوَوْا وَنَصَرُٓوا اُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الْمُؤْمِنُونَ حَقًّاۜ لَهُمْ
مَغْفِرَةٌ وَرِزْقٌ كَرٖيمٌ ﴿٧٤﴾ وَالَّذٖينَ اٰمَنُوا مِنْ بَعْدُ وَهَاجَرُوا
وَجَاهَدُوا مَعَكُمْ فَاُو۬لٰٓئِكَ مِنْكُمْۜ وَاُو۬لُوا الْاَرْحَامِ بَعْضُهُمْ
اَوْلٰى بِبَعْضٍ فٖي كِتَابِ اللّٰهِۜ اِنَّ اللّٰهَ بِكُلِّ شَيْءٍ عَلٖيمٌ ﴿٧٥﴾

**70**- Resûlê min! Ji bo wan ên ku di destên we de êsîr in, bibêje: Eger Xwedê bizane ku di dilên we de xêr heye, wê ji fidyeya (gerewa) ku ji we hatiye standin hêj çêtirê wê bide we û wê li gunehên we bibihure. Xwedê Teala gunehveşêr û dilovîn e.

**71**- (Resûlê min!) Eger ew bixwazin li te xayîntiyê bikin (xemgîn nebe, lewra) wan hêj beriya cenga Bedrê xayîntî bi Xwedê re kiribû. (Lê belê) Xwedê li hemberî wan derfet û hêz da te (ku li Bedrê te zora wan bir û te ew dîl girtin). Xwedê teqez (di karê xwe de) zana û xwedanhîkmet e.

**72**- Bêguman ew ên ku bawerî anîn û (ji bo Xwedê ji welatê xwe) hicret kirin û di riya (dînê) Xwedê de bi malên xwe û canên xwe cîhad kirin û ew ên ku (muhacir) hewandin û arîkariya wan kirin, ha ew serkar û arîkarên hev in. Herçî ew ên ku bawerî anîn, lê belê hicret nekirin; heta ku ew hicret nekin ji xwedîtiya wan tiştek (ji mîrasê) ji we re tune ye. (Digel vê jî) eger ew der barê dîn de arîkariyê ji we bixwazin, bi şertê ku ne li hember milletekî be ku di navbera we û wan de peyman heye, hingê li ser we ferz e ku hûn arîkariya wan bikin. Xwedê karê ku hûn dikin dibîne.

Li gorî vê ayetê muhacir û ensar dibûn mîratgirên hev, her çiqas ew ne lêzimên hev bûna jî. Piştî ku ayeta 75-em daket da zanîn ku bes ji wan yên ku eqrebayên hev bin ew dibin warisên hev û hukmê vê ayetê ji rewacê rakir.

**73**- Ew ên ku kafir in hin ji wan arîkarên hinan in. Eger hûn (ka çawa hûn hatine fermankirin arîkariya hev nekin û erka xwe) neyînin cih, dê li ser erdê bela û fesadiyeke mezin derkeve holê (vêca hêza we lewaz dibe û ya kafiran jî dê zêde bibe).

**74**- Ew ên ku bawerî anîn û (ji warê xwe) hicret kirin û di riya (dînê) Xwedê de cîhad kirin û ew ên ku (muhacir di malên xwe de) vehewandin û arîkariya wan kirin, ha ew bawermendên rasteqîn in. Ji bo wan lêborîn û rizqekî fireh û xweş heye.

**75**- Ew ên ku paşê bawerî anîn û (ji bo qayîlbûna Xwedê ji warê xwe) hicret kirin û bi we re (gelî muhacir û ensaran) li hemberî kafiran cîhad kirin hene lê; vêca ew jî ji we ne. Ew ên ku eqrebayên hev in, di biryar û hukmên Xwedê de munasibtir e ku bibin mîratgirên hev. Bêguman Xwedê bi her tiştî agahdar e



## SÛREYÊ NEHEM TEWBE

Sûreyê Tewbe 129 (sed û bîst û neh) ayet e. Ayeta 128'em û 129'em li Mekkeyê daketine. Ayetên din jî li Medîneyê daketine. Sûreyê Tewbe navê xwe ji ayeta 104-em girtiye, lewra pêwendiya wê bi tobeyê re heye ku di zimanê erebî de tewbe bi maneya poşmanî ye. Ji bilî Tewbe hinek navên wî yên din jî hene. Navê wî yê herî meşhûr Beraet e.

1- Ev ji aliye Xwedê Teala û Pêxemberê wî ve bêrîbûn û derketineke ji peymanê ye ji bo wan muşrikên ku we bi wan re peyman daniye.

2- Vêca (gelî muşrikan) çar mehan (ew ên birûmet ên ku şer di wan de heram e ku ew receb, zîlk'ade, zîl-hicce û muherrem in) bêtirs, bi ewleyî li ser erdê bigerin. Agahdar bin, bêguman hûn nikarin Xwedê (ji ezabdayîna xwe) naçar bihêlin û bêguman Xwedê Teala riswakerê kafiran e.

3- Ev agahdariyek e ji Xwedê û Pêxemberê wî, di cejna mezin (cejna heciyan) de, bi bal tevekê xelkê ve ku Xwedê Teala û Pêxemberê wî ji muşrikan (ew ên ku wan peymana xwe şikand) bêrî ne. Eger hûn tobe bikin (dest ji kafiriyê berdin) vêca ew ji we re çêtir e. (Na) eger hûn (ji îman û heqiyê) berê xwe vegerînin, bizanin ku hûn ê Xwedê Teala bêçare nehêlin. (Resûlê min!) Mizgîniya ezabekî dijwar bide wan ên ku kafir bûne!

4- Ji bilî wan muşrikên ku we bi wan re peyman danî, paşê wan ji peymana xwe tiştek kêm nekir û li hemberî we di ser tu kesî re nehatin, vêca peymana wan bihêlin heta wextê diyarkirî. Bêguman Xwedê Teala ji yên teqwadar hez dike.

5- Vêca eger mehên birûmet (yên ku şer di wan de qedexekirî ye) derbas bûn, êdî li ku derê hûn rastî wan muşrikan bên, wan bikujin, (bi dîlî) wan bigirin, her riyê li ber wan bigirin û li hemû zêrevangehan li wan çavdêriyê bikin. Vêca eger wan tobe kir, bi rengê pêdivî nimêj kir û zekata malê xwe dan êdî riya wan vekin. Bêguman Xwedê gunehveşêr e, dilovîn e.

6- Eger yekî ji muşrikan xwe avête bextê te (ewleyî ji te xwest), ewlehiyê bidê da ku gotina Xwedê Teala bibihîze, piştre wî bigihîne ewlegeha wî. Ev (ewledayîn) ji ber ku ew miletekî nezan in.

كَيْفَ يَكُونُ لِلْمُشْرِكِينَ عَهْدٌ عِنْدَ اللّٰهِ وَعِنْدَ رَسُولِه۪ٓ
اِلَّا الَّذ۪ينَ عَاهَدْتُمْ عِنْدَ الْمَسْجِدِ الْحَرَامِۚ فَمَا اسْتَقَامُوا
لَكُمْ فَاسْتَق۪يمُوا لَهُمْۜ اِنَّ اللّٰهَ يُحِبُّ الْمُتَّق۪ينَ ﴿٧﴾
كَيْفَ وَاِنْ يَظْهَرُوا عَلَيْكُمْ لَا يَرْقُبُوا ف۪يكُمْ
اِلًّا وَلَا ذِمَّةًۜ يُرْضُونَكُمْ بِاَفْوَاهِهِمْ وَتَاْبٰى قُلُوبُهُمْۚ
وَاَكْثَرُهُمْ فَاسِقُونَۚ ﴿٨﴾ اِشْتَرَوْا بِاٰيَاتِ اللّٰهِ ثَمَنًا
قَل۪يلًا فَصَدُّوا عَنْ سَب۪يلِه۪ۜ اِنَّهُمْ سَٓاءَ مَا كَانُوا يَعْمَلُونَ
﴿٩﴾ لَا يَرْقُبُونَ ف۪ي مُؤْمِنٍ اِلًّا وَلَا ذِمَّةًۜ وَاُو۬لٰٓئِكَ هُمُ
الْمُعْتَدُونَ ﴿١٠﴾ فَاِنْ تَابُوا وَاَقَامُوا الصَّلٰوةَ وَاٰتَوُا
الزَّكٰوةَ فَاِخْوَانُكُمْ فِي الدّ۪ينِۜ وَنُفَصِّلُ الْاٰيَاتِ لِقَوْمٍ
يَعْلَمُونَ ﴿١١﴾ وَاِنْ نَكَثُٓوا اَيْمَانَهُمْ مِنْ بَعْدِ عَهْدِهِمْ
وَطَعَنُوا ف۪ي د۪ينِكُمْ فَقَاتِلُٓوا اَئِمَّةَ الْكُفْرِۙ اِنَّهُمْ لَٓا اَيْمَانَ
لَهُمْ لَعَلَّهُمْ يَنْتَهُونَ ﴿١٢﴾ اَلَا تُقَاتِلُونَ قَوْمًا نَكَثُٓوا
اَيْمَانَهُمْ وَهَمُّوا بِاِخْرَاجِ الرَّسُولِ وَهُمْ بَدَؤُ۫كُمْ اَوَّلَ مَرَّةٍۜ
اَتَخْشَوْنَهُمْۚ فَاللّٰهُ اَحَقُّ اَنْ تَخْشَوْهُ اِنْ كُنْتُمْ مُؤْمِن۪ينَ ﴿١٣﴾

7- Ji bilî yên ku li cem Mizgefta Heramê we peyman daye wan (ew cuda ne), erê ma çawa ji bo muşrikan li cem Xwedê û Pêxemberê wî dê peyman hebe? Êdî heta ew der heqê we de rast bin, hûn jî ji wan re rast bin. Bêguman Xwedê Teala ji teqwadaran hez dike (ew teqwadarên ku soza xwe bi cih tînin).

Ji bo muşrikan li cem Xwedê û pêxemberê wî dê çawa peyman çêbibe? Qey wan pêdiviyên peymanê anîne cih? Qey wan destê xwe ji êşandina pêxember û bawermendan vekişandine? Qey wan şerê heqiyê nekirine û arî batilî nekirine? Qey wan li ser erdê fesadî nekirine? Naxwe wan heq kirine ku Xwedê xwe ji wan dûr bike û ji bo wan li cem Xwedê û pêxemberê wî tu peyman nebin. Di ayeta pîroz de ew ên ku hukmê wan ji yê muşrikan hatiye cudakirin, Benî Xuzeyme û Mudlîc in ku ew jî ketine ber peymana Hudeybiyê ya aştiyê. Ji ber ku qureyşiyan û malbatên girêdayên wan peyman xira kirin mislimanan dest bi livbaziyê kirin, çûn Mekke fetih kirin û dest li wan ên ku li ser peymanê mabûn nedan.

8- Erê ma çawa dê ji bo wan li cem Xwedê peyman hebe, eger ew bi ser we bikevin, eqrebatî û peymanê berçav nagirin. Ew bi devê xwe we razî dikin û dilê wan tije kerb û kîn e. Bêguman pirên wan jî jirêderketî ne.

9- Wan, ayetên Xwedê bi bihayekî arzan firotin, vêca wan riya Xwedê Teala li ber xelkê girt. Bêguman a ku ew dikin çiqas pîs e.

10. Ew, der barê tu mislimanekî de, peyman û eqrebatiyê berçav nagirin û ha ew in yên ji hedê xwe der û ew in yên tehdeyî dikin.

11- (Digel vê jî) eger ew tobe bikin û bi rengê pêdivî nimêj bikin û zekata malê xwe bidin, vêca ev di dîn de birayên we ne û em bi awayekî vekirî ayetên xwe ji bo wan ên ku dizanin aşkera dikin.

12- Eger piştî peymandayîna xwe wan sonda xwe şikand û der barê dînê we de zimandirêjî kir, hingê bi pêşeng û serokên kufrê re têbikoşin. Bêguman ji wan re sond û peyman nîn e, (bi wan re têbikoşin) da ku dev ji kufr û dijminahiyê berdin.

13- (Gelî mislimanan!) Ma hûn ê şerê qewmekî nekin ku wan peymana xwe şikand û wan hewl da ku Pêxember (ji warê wî) derxin û di serê pêşîn de jî wan dest bi şerê we kiribû? Ma hûn ji wan ditirsin? Eger bi rastî hûn bawermend in, Xwedê Teala hêjatir e ku hûn jê bitirsin.

قَاتِلُوهُمْ يُعَذِّبْهُمُ اللّٰهُ بِاَيْد۪يكُمْ وَيُخْزِهِمْ وَيَنْصُرْكُمْ عَلَيْهِمْ
وَيَشْفِ صُدُورَ قَوْمٍ مُؤْمِن۪ينَ ﴿١٤﴾ وَيُذْهِبْ غَيْظَ قُلُوبِهِمْ
وَيَتُوبُ اللّٰهُ عَلٰى مَنْ يَشَٓاءُ وَاللّٰهُ عَل۪يمٌ حَك۪يمٌ ﴿١٥﴾ اَمْ حَسِبْتُمْ
اَنْ تُتْرَكُوا وَلَمَّا يَعْلَمِ اللّٰهُ الَّذ۪ينَ جَاهَدُوا مِنْكُمْ وَلَمْ يَتَّخِذُوا
مِنْ دُونِ اللّٰهِ وَلَا رَسُولِه۪ وَلَا الْمُؤْمِن۪ينَ وَل۪يجَةً وَاللّٰهُ خَب۪يرٌ
بِمَا تَعْمَلُونَ ﴿١٦﴾ مَا كَانَ لِلْمُشْرِك۪ينَ اَنْ يَعْمُرُوا مَسَاجِدَ
اللّٰهِ شَاهِد۪ينَ عَلٰٓى اَنْفُسِهِمْ بِالْكُفْرِ اُو۬لٰٓئِكَ حَبِطَتْ اَعْمَالُهُمْ
وَفِي النَّارِ هُمْ خَالِدُونَ ﴿١٧﴾ اِنَّمَا يَعْمُرُ مَسَاجِدَ اللّٰهِ مَنْ
اٰمَنَ بِاللّٰهِ وَالْيَوْمِ الْاٰخِرِ وَاَقَامَ الصَّلٰوةَ وَاٰتَى الزَّكٰوةَ وَلَمْ
يَخْشَ اِلَّا اللّٰهَ فَعَسٰٓى اُو۬لٰٓئِكَ اَنْ يَكُونُوا مِنَ الْمُهْتَد۪ينَ ﴿١٨﴾
اَجَعَلْتُمْ سِقَايَةَ الْحَٓاجِّ وَعِمَارَةَ الْمَسْجِدِ الْحَرَامِ كَمَنْ
اٰمَنَ بِاللّٰهِ وَالْيَوْمِ الْاٰخِرِ وَجَاهَدَ ف۪ي سَب۪يلِ اللّٰهِ لَا يَسْتَوُ۫نَ
عِنْدَ اللّٰهِ وَاللّٰهُ لَا يَهْدِي الْقَوْمَ الظَّالِم۪ينَ ﴿١٩﴾ اَلَّذ۪ينَ اٰمَنُوا
وَهَاجَرُوا وَجَاهَدُوا ف۪ي سَب۪يلِ اللّٰهِ بِاَمْوَالِهِمْ وَاَنْفُسِهِمْ
اَعْظَمُ دَرَجَةً عِنْدَ اللّٰهِ وَاُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الْفَٓائِزُونَ ﴿٢٠﴾

يُبَشِّرُهُمْ

**14-** Şerê wan bikin, Xwedê Teala dê bi destên we wan bide ezabdan, dê wan riswa bike, li ser wan we serkeftî bike û dê dilê civateke bawermend mufa û şad bike,

**15-** Dê ji dilên wan (bawermendan) kînê bibe û Xwedê kê bivê tobeya wî dipejirîne. Xwedê zana û karbinecih e.

**16-** Erê ma hûn guman dikin ku dê dev ji we bê berdan (û hûn neyên ceribandin) heyanî Xwedê (bi zanîneke berçav) nizanibe ka kê ji we cîhad kiriye û ka kî ji we, ji bilî Xwedê, pêxemberê wî û mislimanan tu kes ji xwe re nekiribe dost û arîkar? Xweda ji ya ku hûn dikin teqez agahdar e.

Li gorî hatiye ragihandin ku destekek ji serekên qureyşiyan roja şerê bedrê dîl ketine destê mislimanan ku apê pêxemberê me Ebbas kurê Ebdulmuttelib jî yek ji wan bû. Vêca çend hevalên Pêxember berê xwe dan wan û ew bi muşrikiyê şermezar kirin. 'Elî, ji ber ku Ebbas şerê Pêxemberê Xwedê kiribû, hem jî ji ber ku pêwendiya xwe ji eqrebayên xwe qut kiribû eybdar kir; gotinên tehl jê re gotin. Ebbas got: Çi li we qewimiye ku hûn behsa neqenciyên me dikin, lê hûn qet behsa qenciyên me nakin? 'Elî got: Ma qenciyên we hene? Ebbasî got: Belê, em mizgefta heramê ta'mîr dikin, em dora Ka'bê perde dikin, em avê li heciyan digerînin û em yexsîran serbest berdidin. Êdî der heqê vê mijarê de ev ayeta ha daket.

**17-** Ji muşrikan re nabe ku ew mizgeftên Xwedê Teala ava bikin, digel ku ew bi xwe jî şahdehiya bi kufrê li ser xwe didin. Ev kar û kiryarên wan pûç bûne, her û her ew ê di êgir de bimînin.

**18-** Bêguman yê ku mizgeftên Xwedê ava dike, ew ê ku bi Xwedê û roja axretê bawerî aniye û bi rengê pêdivî nimêj dike û zekata malê xwe dide û ji Xwedê pêştir ji tu kesê din natirse. Vêca hêvî heye ku ew bibin ji yên li ser riya rast.

**19-** Ma hûn (karê) avdayîna heciyan û avakirina Beytullahê (digel ku ew muşrik in) mîna (karê) wî kesê ku bi Xwedê Teala û roja axretê bawerî aniye û di riya Xwedê de cîhad kiriye, wekhev digrin? (Ev) li cem Xwedê ne wekhev in. Xwedê qewmê zalim li ser riya rast rasterê nake.

**20-** Ew ên ku wan bawerî anî, hîcret kir û di riya Xwedê de bi malên xwe û canên xwe cîhad kir, li cem Xwedê mertebeya wan mezintir e, ha ew ên rizgarbûyî bi xwe ne.

يُبَشِّرُهُمْ رَبُّهُمْ بِرَحْمَةٍ مِنْهُ وَرِضْوَانٍ وَجَنَّاتٍ لَهُمْ فِيهَا
نَعِيمٌ مُقِيمٌ ﴿٢١﴾ خَالِدِينَ فِيهَا اَبَدًا اِنَّ اللّٰهَ عِنْدَهُ اَجْرٌ
عَظِيمٌ ﴿٢٢﴾ يَا اَيُّهَا الَّذِينَ اٰمَنُوا لَا تَتَّخِذُوا اٰبَاءَكُمْ
وَاِخْوَانَكُمْ اَوْلِيَاءَ اِنِ اسْتَحَبُّوا الْكُفْرَ عَلَى الْاِيمَانِ وَمَنْ
يَتَوَلَّهُمْ مِنْكُمْ فَاُولٰئِكَ هُمُ الظَّالِمُونَ ﴿٢٣﴾ قُلْ اِنْ
كَانَ اٰبَاؤُكُمْ وَاَبْنَاؤُكُمْ وَاِخْوَانُكُمْ وَاَزْوَاجُكُمْ
وَعَشِيرَتُكُمْ وَاَمْوَالٌ اقْتَرَفْتُمُوهَا وَتِجَارَةٌ تَخْشَوْنَ
كَسَادَهَا وَمَسَاكِنُ تَرْضَوْنَهَا اَحَبَّ اِلَيْكُمْ مِنَ اللّٰهِ
وَرَسُولِهِ وَجِهَادٍ فِي سَبِيلِهِ فَتَرَبَّصُوا حَتّٰى يَأْتِيَ اللّٰهُ بِاَمْرِهِ
وَاللّٰهُ لَا يَهْدِي الْقَوْمَ الْفَاسِقِينَ ﴿٢٤﴾ لَقَدْ نَصَرَكُمُ اللّٰهُ
فِي مَوَاطِنَ كَثِيرَةٍ وَيَوْمَ حُنَيْنٍ اِذْ اَعْجَبَتْكُمْ
كَثْرَتُكُمْ فَلَمْ تُغْنِ عَنْكُمْ شَيْـًٔا وَضَاقَتْ عَلَيْكُمُ
الْاَرْضُ بِمَا رَحُبَتْ ثُمَّ وَلَّيْتُمْ مُدْبِرِينَ ﴿٢٥﴾ ثُمَّ اَنْزَلَ اللّٰهُ
سَكِينَتَهُ عَلٰى رَسُولِهِ وَعَلَى الْمُؤْمِنِينَ وَاَنْزَلَ جُنُودًا لَمْ
تَرَوْهَا وَعَذَّبَ الَّذِينَ كَفَرُوا وَذٰلِكَ جَزَاءُ الْكَافِرِينَ ﴿٢٦﴾

21- Xwedayê wan, bi dilovaniyeke ji cem xwe, bi razîbûnekê û bi bihiştên ku di wan de ji wan re ni'metên seraqetî hene, mizgîniyê dide wan.

22- Ew ê her û her di wan (bihiştan) de bimînin. Bêguman li cem Xwedê (ji bo wan) xelateke mezin heye.

23- Hey gelî yên ku bawerî anîne! Bavên xwe û birayên xwe, eger ew kufrê di ser îmanê re bigirin, ji xwe re nekin xwedî û arîkar. Êdî kî wan ji xwe re bike xwedî û arîkar, vêca ew sitemkar bi xwe ne.

24- (Resûlê min!) Bibêje: Eger bavên we, kurên we, birayên we, jinên we, eşîra we, malê ku we bi dest xwe xistiye, ticareta ku hûn ji zerarkirina wê ditirsin û xaniyên ku hûn ji wan xweş in, li cem we, ji Xwedê Teala, ji Pêxemberê wî û ji cîhada di riya wî de şîrîntir û xweştir bin, vêca çavlirê bin heta Xwedê Teala fermana xwe (bi ezab, ji we re) bîne. Xwedê Teala teqez qewmê jirêderketî nayîne ser riya rast.

Resûlê Ekrem, piştî fetha Mekkê bi diwazdeh hezar (12 000) leşkerên xwe ve berê xwe da Taîfê û çû şerê-Hewazen û seqîfiyan. Hin mislimanan li pirraniya leşkerên Îslamê nêrîn û gotin: "Êdî tu kes nikare vî leşkerî bişkîne." Lêbelê çi dema li newala Huneynê ew û leşkerên muşrikan, ên ku bi hejmara xwe gelekî ji wan hindiktir bûn hatin hemberê hev. Misliman digel piraniya wan têkçûn û bezîyan. Lewra ew bi pirbûna xwe bawer bûbûn. Vêca ev ayeta ku dê bê vê rewşa wan destnîşan dike.

25- Sond be, Xwedê di gelek cihan de (mîna Bedrê, Hudeybiyê, Xeyberê û fetha Mekkê) arîkariya we kir. Roja Huneynê jî (arîkariya we kir); wê dema piraniya we hûn germ kirin (we Xwedê ji bîr kir û we bi piraniya xwe pişt girêda), vêca piraniya we tu feyde negihande we û tu tişt ji we neda paş. Erd digel firehiya xwe jî li we teng bû û paşî we pişta xwe da şer û hûn revîn.

26- Piştî reva we, Xwedê aramî û dilxweşiya xwe bi ser Pêxember û bawermendan de anî û leşkerekî ku ji we ve nexuya (ji bo arîkariya we) hinart û ew ên kafir bûne (bi kuştin û êsîrkirinê) ceza kirin. Ha ev e cezayê kafiran.

ثُمَّ يَتُوبُ اللّٰهُ مِنْ بَعْدِ ذٰلِكَ عَلٰى مَنْ يَشَٓاءُۜ وَاللّٰهُ
غَفُورٌ رَح۪يمٌ ﴿٢٧﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُٓوا اِنَّمَا الْمُشْرِكُونَ
نَجَسٌ فَلَا يَقْرَبُوا الْمَسْجِدَ الْحَرَامَ بَعْدَ عَامِهِمْ
هٰذَاۚ وَاِنْ خِفْتُمْ عَيْلَةً فَسَوْفَ يُغْن۪يكُمُ اللّٰهُ مِنْ
فَضْلِه۪ٓ اِنْ شَٓاءَۜ اِنَّ اللّٰهَ عَل۪يمٌ حَك۪يمٌ ﴿٢٨﴾ قَاتِلُوا الَّذ۪ينَ
لَا يُؤْمِنُونَ بِاللّٰهِ وَلَا بِالْيَوْمِ الْاٰخِرِ وَلَا يُحَرِّمُونَ
مَا حَرَّمَ اللّٰهُ وَرَسُولُهُ وَلَا يَد۪ينُونَ د۪ينَ الْحَقِّ
مِنَ الَّذ۪ينَ اُو۫تُوا الْكِتَابَ حَتّٰى يُعْطُوا الْجِزْيَةَ
عَنْ يَدٍ وَهُمْ صَاغِرُونَ ﴿٢٩﴾ وَقَالَتِ الْيَهُودُ
عُزَيْرٌۨ ابْنُ اللّٰهِ وَقَالَتِ النَّصَارَى الْمَس۪يحُ ابْنُ اللّٰهِۜ
ذٰلِكَ قَوْلُهُمْ بِاَفْوَاهِهِمْۚ يُضَاهِؤُ۫نَ قَوْلَ الَّذ۪ينَ
كَفَرُوا مِنْ قَبْلُۜ قَاتَلَهُمُ اللّٰهُۘ اَنّٰى يُؤْفَكُونَ ﴿٣٠﴾
اِتَّخَذُٓوا اَحْبَارَهُمْ وَرُهْبَانَهُمْ اَرْبَابًا مِنْ دُونِ اللّٰهِ
وَالْمَس۪يحَ ابْنَ مَرْيَمَۚ وَمَٓا اُمِرُٓوا اِلَّا لِيَعْبُدُٓوا اِلٰهًا
وَاحِدًاۚ لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَۜ سُبْحَانَهُ عَمَّا يُشْرِكُونَ ﴿٣١﴾

يُر۪يدُونَ

**27-** Paşê Xwedê tobeya wî kesê ku Ew bivê qebûl dike û Xwedê gunehjêbir e, dilovîn e.

**28-** Hey gelî yên ku bawerî anîne! Bêguman herçî ku muşrik in bes ew pîs in (pîsîtiya bawerî û ya bîr û ramanî ye), vêca piştî vê salê (sala nehê hicretê) bila nêzî Beytullahê (Mizgefta Heramê) nebin. Eger hûn (ji nehatina wan ji bo hecê) ji xizaniyê bitirsin (ku bi hatina wan rewac dikeve kirîn û firotinê) vêca eger Xwedê bivê ji kerema xwe dê we dewlemend bike. Bêguman Xwedê Teala (di karê xwe de) zana ye, karbinecih e.

**29-** (Gelî bawermendan!) Ji cihû û filehan ew ên ku bi Xwedê û roja qiyametê bawerî nayînin û tiştê ku Xwedê û Pêxemberê wî heram kirî, heram nadêrin û dînê heq (dînê îslamê) ji xwe re nakin dîn, heta ku ew bi destê xwe, perşikestî ciziya xwe nedin, şerê wan bikin.

**30-** Cihûyan got: Uzeyr kurê Xwedê ye! Filehan jî got: Mesîh kurê Xwedê ye! Ev gotin a devên wan e, (der barê vê de tu delîla wan nîn e, belkî gotina xwe) dişibînin gotina wan kafirên berê. Xwedê wan bikuje (û lanetê li wan bibarîne), çawa berê xwe ji heqiyê vedigerînin bi bal pûçiyê ve!

**31-** Wan (cihû û filehan) ji bilî Xwedê, zana û abidên xwe û Îsayê kurê Meryemê ji bo xwe îlah girtin. Hal ev e ku ew her hatine fermankirin ku yek Xwedayî bihebînin ku ji wî pê ve tu xweda nîn in û ew ji ya ku jê re dikin hemkûf, pak û paqij e.

يُرِيدُونَ اَنْ يُطْفِؤُا نُورَ اللّٰهِ بِاَفْوَاهِهِمْ وَيَأْبَى اللّٰهُ اِلَّٓا اَنْ
يُتِمَّ نُورَهُ وَلَوْ كَرِهَ الْكَافِرُونَ ﴿٣٢﴾ هُوَ الَّذٖٓى اَرْسَلَ
رَسُولَهُ بِالْهُدٰى وَدٖينِ الْحَقِّ لِيُظْهِرَهُ عَلَى الدّٖينِ كُلِّهٖ
وَلَوْ كَرِهَ الْمُشْرِكُونَ ﴿٣٣﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذٖينَ اٰمَنُٓوا اِنَّ
كَثٖيرًا مِنَ الْاَحْبَارِ وَالرُّهْبَانِ لَيَأْكُلُونَ اَمْوَالَ النَّاسِ
بِالْبَاطِلِ وَيَصُدُّونَ عَنْ سَبٖيلِ اللّٰهِ وَالَّذٖينَ يَكْنِزُونَ
الذَّهَبَ وَالْفِضَّةَ وَلَا يُنْفِقُونَهَا فٖى سَبٖيلِ اللّٰهِ فَبَشِّرْهُمْ
بِعَذَابٍ اَلٖيمٍ ﴿٣٤﴾ يَوْمَ يُحْمٰى عَلَيْهَا فٖى نَارِ جَهَنَّمَ
فَتُكْوٰى بِهَا جِبَاهُهُمْ وَجُنُوبُهُمْ وَظُهُورُهُمْ هٰذَا مَا
كَنَزْتُمْ لِاَنْفُسِكُمْ فَذُوقُوا مَا كُنْتُمْ تَكْنِزُونَ ﴿٣٥﴾
اِنَّ عِدَّةَ الشُّهُورِ عِنْدَ اللّٰهِ اثْنَا عَشَرَ شَهْرًا فٖى
كِتَابِ اللّٰهِ يَوْمَ خَلَقَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ مِنْهَٓا
اَرْبَعَةٌ حُرُمٌ ذٰلِكَ الدّٖينُ الْقَيِّمُ فَلَا تَظْلِمُوا
فٖيهِنَّ اَنْفُسَكُمْ وَقَاتِلُوا الْمُشْرِكٖينَ كَٓافَّةً كَمَا
يُقَاتِلُونَكُمْ كَٓافَّةً وَاعْلَمُٓوا اَنَّ اللّٰهَ مَعَ الْمُتَّقٖينَ ﴿٣٦﴾

32- Ew (muşrik û cihû û fileh) dixwazin ronahiya Xwedê bi devên xwe vemirînin. Xwedê jî bes dixwaze ronahiya xwe temam bike, çendî kafir vê nexwazin jî.

33- Ew e yê ku pêxemberê xwe bi riya rast û dînê heq şandiye da ku dînê wî bi ser hemû dînan bixe, her çiqas muşrik (vê) nexwazin jî.

34- Hey gelî yên ku bawerî anîne! Bêguman gelek ji rahib û ehbaran (ji îbadetkar û zanayan), malên xelkê bi sitemkarî dixwin, riya Xwedê li ber xelkê digirin. Ew ên ku zêr û zîv kom dikin û di riya (dînê) Xwedê de xerc nakin, vêca (Resûlê min) mizgîniya ezabekî dijwar bide wan!

Haxamên cihûyan û keşîşên filehan bi hevokên pîroz yên ku di pirtûkên wan de bûn, ji xwe re bertîl werdigirtin û bi malê dinyayê diguherandin, yan jî hukmên wan li gorî berjewendiyên xwe şîrove dikirin. Bi taybetî jî ayetên ku di bara pêxemberiya Muhemmed de bûn guherandin. Vêca ev ayeta ku li jor buhurî van karên wan yên mekroh destnîşan dike. Ji bilî vê jî ayet xebera nexêrê dide wan ên ku zêr û zîv û diravan bicivînin û zekata wan nedin.

35- Roja ku (ev diravên wan) di agirê dojehê de têne sorkirin û eniya wan, teniştên wan û pişta wan bi wan têne daxkirin (û ji wan re tê gotin): Ha ev, ew serwet e ku we ji bo xwe dabû hev. Êdî cezayê wan diravên ku we ew dabûn hev tehm bikin!

36- Bêguman ji roja ku Xwedê Teala erd û esman çêkirin, li cem Xwedê hejmara mehan di kitêba Xwedê de dozdeh in. Ji wan mehan çar jê birûmet in (zîl-qade, zîl-hîcce, muherrem û receb in ku di wan de şer û kuştin heram e). Ha ev, dînê rast û durist e. Di wan mehan de zilmê li xwe nekin. (Gelî mislimanan!) Çawa ku muşrik hemû bi hev re şerê we dikin, hûn jî wisa hemû bi hev re şerê wan bikin û bizanin ku Xwedê bi mutteqiyan re ye.

Ellah Teala, çaxê ku asîman û erd xuliqandin, lebat û gera heyvê wisa xist rê ku li gorî sîstema heyvê di salekê de diwazdeh meh hatin meydanê. Vêca salek bû 355 roj. Navên van mehan ev in: Muherrem, Sefer, Rebîûlewwel, Rebîûlaxir, Cemazulewwel, Cemazûlaxir, Receb, Şeban, Remezan, Şewwal, Zul-qade, Zulhicce. Ew mehên heram yên ku ayetê ew destnîşan kirine: Zulq'ade, Zulhicce, Muherrem û Receb e. Weke ku ji ayeta 5-em a vî Sûreyî jî tê zanîn; di van mehan de şer hatibû qedexekirin. Vêca ji wan re mehên heram yanî mehên ceng qedexekirî hatiye gotin.

اِنَّمَا النَّسٖٓيءُ زِيَادَةٌ فِي الْكُفْرِ يُضَلُّ بِهِ الَّذٖينَ
كَفَرُوا يُحِلُّونَهُ عَامًا وَيُحَرِّمُونَهُ عَامًا لِيُوَاطِؤُا عِدَّةَ
مَا حَرَّمَ اللّٰهُ فَيُحِلُّوا مَا حَرَّمَ اللّٰهُ زُيِّنَ لَهُمْ سُٓوءُ
اَعْمَالِهِمْ وَاللّٰهُ لَا يَهْدِي الْقَوْمَ الْكَافِرٖينَ ﴿٣٧﴾
يَٓا اَيُّهَا الَّذٖينَ اٰمَنُوا مَا لَكُمْ اِذَا قٖيلَ لَكُمُ
انْفِرُوا فٖي سَبٖيلِ اللّٰهِ اثَّاقَلْتُمْ اِلَى الْاَرْضِ اَرَضٖيتُمْ
بِالْحَيٰوةِ الدُّنْيَا مِنَ الْاٰخِرَةِ فَمَا مَتَاعُ الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا
فِي الْاٰخِرَةِ اِلَّا قَلٖيلٌ ﴿٣٨﴾ اِلَّا تَنْفِرُوا يُعَذِّبْكُمْ
عَذَابًا اَلٖيمًا وَيَسْتَبْدِلْ قَوْمًا غَيْرَكُمْ وَلَا تَضُرُّوهُ
شَيْـًٔا وَاللّٰهُ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَدٖيرٌ ﴿٣٩﴾ اِلَّا تَنْصُرُوهُ
فَقَدْ نَصَرَهُ اللّٰهُ اِذْ اَخْرَجَهُ الَّذٖينَ كَفَرُوا ثَانِيَ اثْنَيْنِ
اِذْ هُمَا فِي الْغَارِ اِذْ يَقُولُ لِصَاحِبِهٖ لَا تَحْزَنْ
اِنَّ اللّٰهَ مَعَنَا فَاَنْزَلَ اللّٰهُ سَكٖينَتَهُ عَلَيْهِ وَاَيَّدَهُ بِجُنُودٍ
لَمْ تَرَوْهَا وَجَعَلَ كَلِمَةَ الَّذٖينَ كَفَرُوا السُّفْلٰى
وَكَلِمَةُ اللّٰهِ هِيَ الْعُلْيَا وَاللّٰهُ عَزٖيزٌ حَكٖيمٌ ﴿٤٠﴾

اِنْفِرُوا

37- Bêguman paşêxistin (a mehên birûmet ên ku şer di wan de heram e bi hinek mehên din da ku rûmeta wan bişkînin) zêdenoqbûna di kafiriyê de ye. Ew ên ku kafir bûne pê gumrah dibin (riya rast winda dikin). Salekê helal dikin û sala din jî heram dikin da ku hejmara wan bibe hevdengeyî hejmara (mehên) ku Xwedê Teala ew heram kirin. Vêca ew bi vê kiryara xwe heramê Xwedê helal dikin. (Bi vî awayî) karên wan ên xerab ji wan re hatine xemilandin. Xwedê teqez civata kafiran bi ser riya rast ve nake.

Çi dema Resûlê Xwedê ji xezwa Taîf û Huneynê vegeriya, pêhesiya ku "Împeretoriya Bîzansê 40 hezar leşker amade kiriye da ku were şerê mislimanan bike û wan ji navê bibe. Ev bûyer di sala nehem ya hicretê de rûdabû. Vêca Pêxember (s) jî li hemberê Bîzansê cîhad îlan kir ku di demeke ku tengezarî pir bû, li welêt dilaxêvî bû, germî pir dijwar bû û di çaxê xurmegihaştinê de bû. Vêca li ser xelkê zor û giran hat ku biçin şerê Romê. Wan dixwest li ber sihê bêhna xwe berdin, li nava cih û malê xwe bimînin û ji wan re pir zor hat ku derkevin cengê. Di vê navê de munafiq jî li dijê pêxember axivîn û li nav xelkê belav kirin ku îlana şer li hemberî Bîzansê xwekuştin e. Ji loma hin misliman bi vê dengwêşiya wan xapiyan û nexwestin beşdarî cîhadê bibin. Lêbelê bi hewldana pêxember û hevalên wî 30 hezar leşker hate amadekirin û hatin heta Tebûkê. Vêca çi dema Bîzansiyan bihîstin ku wa ye misliman hatine şerê wan di cih de vegeriyan û bazdan. Vêca ji vê û pêde, ev ayetên ku tên di vê seferê de di bara rewş û helwesta misliman û munafiqan de nazil bûne.

38- Hey gelî yên ku bawerî anîne! Ma çi li we qewimîbû, dema ji we re hate gotin: Hûn hemû di riya Xwedê de derkevin cîhadê, we xwe berda erdê (û hûn derneketin cîhadê), erê ma we jiyana axretê da bi jiyana dinyayê, vêca (bizanin) xweşiya jiyana dinyayê, li ber ya axretê kêm û bêqîmet e.

39- Eger hûn (gelî bawermendan) pêk ve dernekevin cîhadê, Xwedê dê bi ezabekî dijwar we bide ezabdan û wê qewmekî din têxe şûna we û hûn ê nikaribin tu ziyanê jî bidin Xwedê. Xweda teqez li ser her tiştî kara ye.

40- Eger hûn (gelî bawermendan) arîkariya Pêxember nekin, vêca birastî Xwedê arîkariya wî kiriye. Wê dema kafiran ew (ji Mekkê) derxistin ku ew yek ji diduyan bû (ew û Ebûbekir bi hev re bûn). Wê dema ew her du di şekeftê de bûn, ji hevalê xwe (Ebûbekir) re got: Xemgîn mebe, bêguman Xwedê bi me re ye. Êdî Xwedê aramiya xwe bi ser de anî û piştevaniya wî bi leşkerekî kir ku we ew nedidîtin. Daxwaza kafiran (şirk û kafirî) bi bin xist. Daxwaza Xwedê (îslam) vêca ya herî bilind e. Xwedê muheqeq di kar û barê xwe de 'ezîz e, hekîm e.

اِنْفِرُوا خِفَافًا وَثِقَالاً وَجَاهِدُوا بِاَمْوَالِكُمْ وَاَنْفُسِكُمْ
فِى سَبِيلِ اللّٰهِ ذٰلِكُمْ خَيْرٌ لَكُمْ اِنْ كُنْتُمْ تَعْلَمُونَ
٤١ لَوْ كَانَ عَرَضًا قَرِيبًا وَسَفَرًا قَاصِدًا لَاتَّبَعُوكَ وَلٰكِنْ
بَعُدَتْ عَلَيْهِمُ الشُّقَّةُ وَسَيَحْلِفُونَ بِاللّٰهِ لَوِ اسْتَطَعْنَا
لَخَرَجْنَا مَعَكُمْ يُهْلِكُونَ اَنْفُسَهُمْ وَاللّٰهُ يَعْلَمُ اِنَّهُمْ
لَكَاذِبُونَ ٤٢ عَفَا اللّٰهُ عَنْكَ لِمَ اَذِنْتَ لَهُمْ حَتّٰى يَتَبَيَّنَ
لَكَ الَّذِينَ صَدَقُوا وَتَعْلَمَ الْكَاذِبِينَ ٤٣ لَا يَسْتَاْذِنُكَ
الَّذِينَ يُؤْمِنُونَ بِاللّٰهِ وَالْيَوْمِ الْاٰخِرِ اَنْ يُجَاهِدُوا بِاَمْوَالِهِمْ
وَاَنْفُسِهِمْ وَاللّٰهُ عَلِيمٌ بِالْمُتَّقِينَ ٤٤ اِنَّمَا يَسْتَاْذِنُكَ الَّذِينَ
لَا يُؤْمِنُونَ بِاللّٰهِ وَالْيَوْمِ الْاٰخِرِ وَارْتَابَتْ قُلُوبُهُمْ فَهُمْ
فِى رَيْبِهِمْ يَتَرَدَّدُونَ ٤٥ وَلَوْ اَرَادُوا الْخُرُوجَ لَاَعَدُّوا
لَهُ عُدَّةً وَلٰكِنْ كَرِهَ اللّٰهُ انْبِعَاثَهُمْ فَثَبَّطَهُمْ وَقِيلَ اقْعُدُوا
مَعَ الْقَاعِدِينَ ٤٦ لَوْ خَرَجُوا فِيكُمْ مَا زَادُوكُمْ
اِلَّا خَبَالاً وَلَاَوْضَعُوا خِلَالَكُمْ يَبْغُونَكُمُ الْفِتْنَةَ
وَفِيكُمْ سَمَّاعُونَ لَهُمْ وَاللّٰهُ عَلِيمٌ بِالظَّالِمِينَ ٤٧

41- (Gelî mislimanan!) Bi barsivikî û bargiranî ve derkevin cengê, bi malên xwe û bi canê xwe di riya Xwedê de têbikoşin, ha ev ji bo we çêtir e eger bi rastî hûn dizanin.

Di ayeta pîroz de mebest ji “bi barsivik û bargiranî ve” ev e: Şertên şer çi dibin bila bibin, çi şer rehet be çi zor be, çi hûn siwar bin çi hûn peya bin, çi hûn xurt çi hûn lawaz bin, çi hûn kal bin çi hûn ciwan bin derkevin şerê neyaran ji bo bi vî awayî hûn serbestiya xwe bistînin û azadane bijîn.

42- (Resûlê min!) Eger (gaziya te ne ji bo cengê bûya, lê) ji bo bi destxistineke hêsan an jî sefereke navinc (ne kurt û dirêj) bûya, bêguman dê wan bidana dûv te. Lê belê riya zehmet ji wan re dûr hat û laşgiran bûn. Ew jî dê bi navê Xwedê sond bixwin (û bibêjin): Eger me karîbûya teqez em ê jî digel we derketibûna. Ew (bi sondên derew) xwe dibin helakê. Xwedê teqez dizane ku ew bêguman derewkar in.

Dema Pêxember xwe amade dikir da ku derkeve xezweya Tebûkê, munafiq hatin balê, jê re uzrê xwe gotin û nexwestin derkevin şer. Ji ber ku Pêxember zanîbû ji wan ên ku bêyî dilê xwe bên şer xêr nayê, destûr da wan. Vêca ev ayeta ku hê tê der heqê vê mijarê de daket.

43- (Resûlê min!) Xwedê te bibexşîne, heyanî yên rastbêj ji te re diyar nebin û yên derewker jî tu nas nekî, erê ma ji bo çi te destûra wan da?

44- Ew ên ku bi Xwedê û roja axretê bawerî tînin, ne ew in ku destûrê ji te bixwazin da ku xwe bi paş de bihêlin ji cîhada bi mal û canê xwe di riya Xwedê de. Xwedê jî teqez bi yên teqwadar dizane.

45- Lê belê, ew ên ku bi Xwedê û roja axretê bawerî nayînin û der barê dîn de dilên wan ketiye gumanê û her ew di nav gumanan de bi sergêjane diçin û tên, ji te destûrê dixwazin (da ku neçine şer).

46- Eger wan bivêya bi we re derkevin şer, teqez ji bo vê amadahiyek dê bikirina. Lê belê Xwedê derketina wan bi we re nexwest, vêca li ber wan giran kir û (ji wan re) hate gotin: Hûn jî digel ên rûniştî (pîr û jin û zarokan) rûnin!

47- Eger ew digel we derketibûne ew pê sergêjiya we divên û di nav we de jî yên ku guh bidin wan hene. Xwedê bi stemkaran dizane.

لَقَدِ ابْتَغَوُا الْفِتْنَةَ مِنْ قَبْلُ وَقَلَّبُوا لَكَ الْاُمُورَ حَتّٰى جَٓاءَ
الْحَقُّ وَظَهَرَ اَمْرُ اللّٰهِ وَهُمْ كَارِهُونَ ﴿٤٨﴾ وَمِنْهُمْ
مَنْ يَقُولُ ائْذَنْ لٖى وَلَا تَفْتِنّٖىۜ اَلَا فِى الْفِتْنَةِ سَقَطُواۜ
وَاِنَّ جَهَنَّمَ لَمُحٖيطَةٌ بِالْكَافِرٖينَ ﴿٤٩﴾ اِنْ تُصِبْكَ
حَسَنَةٌ تَسُؤْهُمْۚ وَاِنْ تُصِبْكَ مُصٖيبَةٌ يَقُولُوا قَدْ اَخَذْنَٓا
اَمْرَنَا مِنْ قَبْلُ وَيَتَوَلَّوْا وَهُمْ فَرِحُونَ ﴿٥٠﴾ قُلْ لَنْ
يُصٖيبَنَٓا اِلَّا مَا كَتَبَ اللّٰهُ لَنَاۚ هُوَ مَوْلٰينَاۚ وَعَلَى اللّٰهِ
فَلْيَتَوَكَّلِ الْمُؤْمِنُونَ ﴿٥١﴾ قُلْ هَلْ تَرَبَّصُونَ بِنَٓا اِلَّٓا
اِحْدَى الْحُسْنَيَيْنِۜ وَنَحْنُ نَتَرَبَّصُ بِكُمْ اَنْ
يُصٖيبَكُمُ اللّٰهُ بِعَذَابٍ مِنْ عِنْدِهٖٓ اَوْ بِاَيْدٖينَاۘ
فَتَرَبَّصُٓوا اِنَّا مَعَكُمْ مُتَرَبِّصُونَ ﴿٥٢﴾ قُلْ اَنْفِقُوا طَوْعًا
اَوْ كَرْهًا لَنْ يُتَقَبَّلَ مِنْكُمْۜ اِنَّكُمْ كُنْتُمْ قَوْمًا
فَاسِقٖينَ ﴿٥٣﴾ وَمَا مَنَعَهُمْ اَنْ تُقْبَلَ مِنْهُمْ نَفَقَاتُهُمْ اِلَّٓا
اَنَّهُمْ كَفَرُوا بِاللّٰهِ وَبِرَسُولِهٖ وَلَا يَأْتُونَ الصَّلٰوةَ اِلَّا
وَهُمْ كُسَالٰى وَلَا يُنْفِقُونَ اِلَّا وَهُمْ كَارِهُونَ ﴿٥٤﴾

فَلَا

**48**- (Resûlê min!) Bêguman berî vêga (di cenga Tebûkê de) jî ji bo we xerabî dixwestin, fetl û dekan ji bo te digerendin (da ku te ji cîhadê sist bikin), heta ku heq (arîkariya Xwedê Teala û piştevaniya wî ji bo te) hat û dînê Xwedê bi ser ket, digel ku wan ev nediviya jî.

**49**- Hin ji wan (munafiqan) dibêjin: Destûra min bide (ku ez neyême şerê Rûmê û min nexe gunehkariyê). Bizanibin guneh ew e ya ku ew bi xwe tê de ne û bêguman dojehê dor li kafiran girtiye.

Li gorî Îbnu Ebbas gotiye: Ew di heqê Ced kurê Qeys de nazil bûye. Çi dema Pêxemberê Xwedê xwest derkeve xezweya Tebûkê ji Ced kurê Qeys re- ku ew mirovekî munafiq bû- got: Ya Ebûweheb! Ma tu têyî şerê Celadê kurê Esfer-ê romî- ku tu ji xwe re ji wan xort û qîzên ciwan wergirî? Vêca jê re got: Ya Resûlê Xwedê! Bi rastî milletê min dizanê ku ez pêwendê jina me û ez hîç nikarim bêyî wan bijîm. Ez ditirsim ku gava zaroyên Esferî bibînim ez xwe ranegirim. Nexwe min neyêxe nava tevdanê û destûrê bide min ku ez li malê rûnim. Lê ez ê bi malê xwe arîkariya te bikim. Vêca Pêxemberê Xwedê Teala dev jê berda û jê re got: Min destûra te da! Ji loma Xwedê ew ayeta ku li jorê buhurî di bara wî û yên wekî wî de şand û rastiya wî eşkere kir.

**50**- (Resûlê min!) Eger qenciyek (serkeftin û xeni'metek) bigihîje te li xweşa wan naçe û eger xerabiyek (kuştin an birîndariyek) bigihîje te, dibêjin: Me, ji berê ve tedbîra xwe girtibû û bi kêfxweşî berê xwe didin malên xwe.

**51**- Bibêje: Ji ya ku Xwedê Teala ji bo me nivîsî pê ve qet tiştek nagihîje me. Xwedê arîkar û piştevanê me ye, vêca bila bawermend xwe tenê bispêrin Xwedê Teala.

**52**- Bibêje: Ma ku yek ji du qenciyan (serkeftin û serbilindî yan jî şehîdbûn û lêborîn) bigihîje me, hûn çavnêriya çi dikin? Em jî ji bo we li hêviyê ne ku Xwedê ji cem xwe, yan jî bi destên me ezabekî bigihîjîne we. De heydê çavlirê bin, em jî bi we re çavlirê ne.

**53**- Bibêje: Hûn çi bi dilê xwe û çi bêyî dilê xwe malê xwe bidin her ji we nayê qebûlkirin. Bêguman hûn civateke jirêderketî ne.

**54**- Bêguman ew tiştê ku nahêle sedeqe û xêrên wan qebûl bibe, ji bilî ku wan bawerî bi Xwedê û Peyxemberê wî neanîn û nimêj her bi tiralî û sistayî kirin û ku ji naçarî malê xwe xerc kirin pê ve ne tiştekî din bû.

فَلَا تُعْجِبْكَ اَمْوَالُهُمْ وَلَٓا اَوْلَادُهُمْ اِنَّمَا يُرِيدُ اللّٰهُ لِيُعَذِّبَهُمْ
بِهَا فِى الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا وَتَزْهَقَ اَنْفُسُهُمْ وَهُمْ كَافِرُونَ
٥٥ وَيَحْلِفُونَ بِاللّٰهِ اِنَّهُمْ لَمِنْكُمْ وَمَا هُمْ مِنْكُمْ
وَلٰكِنَّهُمْ قَوْمٌ يَفْرَقُونَ ٥٦ لَوْ يَجِدُونَ مَلْجَاً اَوْ مَغَارَاتٍ
اَوْ مُدَّخَلًا لَوَلَّوْا اِلَيْهِ وَهُمْ يَجْمَحُونَ ٥٧ وَمِنْهُمْ مَنْ
يَلْمِزُكَ فِى الصَّدَقَاتِ فَاِنْ اُعْطُوا مِنْهَا رَضُوا وَاِنْ
لَمْ يُعْطَوْا مِنْهَٓا اِذَا هُمْ يَسْخَطُونَ ٥٨ وَلَوْ اَنَّهُمْ
رَضُوا مَٓا اٰتٰيهُمُ اللّٰهُ وَرَسُولُهُ وَقَالُوا حَسْبُنَا اللّٰهُ سَيُؤْتِينَا
اللّٰهُ مِنْ فَضْلِه۪ وَرَسُولُهُٓ اِنَّٓا اِلَى اللّٰهِ رَاغِبُونَ ٥٩ اِنَّمَا
الصَّدَقَاتُ لِلْفُقَرَٓاءِ وَالْمَسَاك۪ينِ وَالْعَامِل۪ينَ عَلَيْهَا وَالْمُؤَلَّفَةِ
قُلُوبُهُمْ وَفِى الرِّقَابِ وَالْغَارِم۪ينَ وَفِى سَب۪يلِ اللّٰهِ
وَابْنِ السَّب۪يلِ فَر۪يضَةً مِنَ اللّٰهِ وَاللّٰهُ عَل۪يمٌ حَك۪يمٌ ٦٠
وَمِنْهُمُ الَّذ۪ينَ يُؤْذُونَ النَّبِىَّ وَيَقُولُونَ هُوَ اُذُنٌ قُلْ اُذُنُ خَيْرٍ
لَكُمْ يُؤْمِنُ بِاللّٰهِ وَيُؤْمِنُ لِلْمُؤْمِن۪ينَ وَرَحْمَةٌ لِلَّذ۪ينَ اٰمَنُوا
مِنْكُمْ وَالَّذ۪ينَ يُؤْذُونَ رَسُولَ اللّٰهِ لَهُمْ عَذَابٌ اَل۪يمٌ ٦١

حِزْبٌ

**55**- Bila malên wan û zarokên wan te ecêbmayî nehêlin. Bêguman Xwedê Teala bes di jiyana cîhanê de dixwaze wan pê bide ezabdayîn û wan li ser kufrê bimirîne.

**56**- Munafiq bi Xwedê Teala sond dixwin ku bêguman ew ji we ne. Hal ev e, ew ne ji we ne. Lê belê ew civatek e ku (ji şûrên we) ditirsin.

**57**- Eger wan ewlegehek (ku tê de hatibûna parastin) an şikeftek (ku tê de xwe veşartina) yan jî sitargehek (ku çûbana tê de) dîtibûna, wê berê xwe bi bez bidanê.

Li gorî rîwayetan, gava Resûlê Ekrem, xenîmeyek li mislimanan parve dikir ji êla Temîm yekî navê xwe Zûl-xuweysîre jê re got: "Ya Resûlullah! Bi dadmendî belav bike." Resûlullah jê re got: Wisan ha! Heke ez bi dadmendî hukim nekim, ma kî heye ku dadmendiyê bike. Êdî di bara vê yekê de ev ayeta ku bê nazil bû.

**58**- (Resûlê min!) Hin ji wan der barê (parvekirina) sedeqan de te eybdar dikin, vêca eger ji sedeqa (parek) gihîşte wan qayîl dibin û eger negihîşte wan jî dixeyidin.

**59**- Eger ew bi ya ku Xwedê û Pêxemberê wî daye wan qayîl bibûna û bigotina Xwedê besî me ye, Xwedê dê ji kerema xwe bide me û Pêxemberê wî jî mafê me yê rewa winda nake û em bêguman li hêviya Xwedayê xwe ne, (dê ev ji wan re çêtir bûya).

**60**- Bêguman zekat, bes ji bo feqîr û belengazan, ji bo karmendên zekatê û yên ku dilê wan bi îslamê xweş bibe, ji bo koleyên ku dixwazin azad bibin û deyndarên ku nikarin deynên xwe bidin, ji bo yên ku di riya Xwedê de cîhadê dikin û ji bo rêwiyan e. (Ev dabeşkirin) ferzeke ji cem Xwedê ye. Xwedê Teala (di karê xwe de) zana û karbinecih e.

**61**- Ji munafiqan hin hene ku eziyetê didine Pêxember û dibêjin: Muhemmed guhê xwe dide her tiştî û ji her gotinê bawer dike. Bibêje: Ew guhdariya her tiştî dike lê ew ji bo xêra we ye. Ew baweriyê bi Xwedê Teala tîne û bi gotinên mislimanan jî bawer e. Ew ji bo wan ên ku bi we baweriyê tînin, rehmetek e. Ew ên ku Pêxemberê Xwedê diêşînin, ji bo wan ezabekî dijwar heye.

يَحْلِفُونَ بِاللّٰهِ لَكُمْ لِيُرْضُوكُمْۚ وَاللّٰهُ وَرَسُولُهُٓ اَحَقُّ
اَنْ يُرْضُوهُ اِنْ كَانُوا مُؤْمِنِينَ ﴿٦٢﴾ اَلَمْ يَعْلَمُٓوا اَنَّهُ مَنْ
يُحَادِدِ اللّٰهَ وَرَسُولَهُ فَاَنَّ لَهُ نَارَ جَهَنَّمَ خَالِدًا فِيهَاۜ
ذٰلِكَ الْخِزْيُ الْعَظِيمُ ﴿٦٣﴾ يَحْذَرُ الْمُنَافِقُونَ اَنْ تُنَزَّلَ
عَلَيْهِمْ سُورَةٌ تُنَبِّئُهُمْ بِمَا فِي قُلُوبِهِمْۜ قُلِ اسْتَهْزِؤُاۚ
اِنَّ اللّٰهَ مُخْرِجٌ مَا تَحْذَرُونَ ﴿٦٤﴾ وَلَئِنْ سَاَلْتَهُمْ
لَيَقُولُنَّ اِنَّمَا كُنَّا نَخُوضُ وَنَلْعَبُۜ قُلْ اَبِاللّٰهِ وَاٰيَاتِهِ
وَرَسُولِهِ كُنْتُمْ تَسْتَهْزِؤُنَ ﴿٦٥﴾ لَا تَعْتَذِرُوا قَدْ كَفَرْتُمْ
بَعْدَ اِيمَانِكُمْۜ اِنْ نَعْفُ عَنْ طَٓائِفَةٍ مِنْكُمْ نُعَذِّبْ
طَٓائِفَةً بِاَنَّهُمْ كَانُوا مُجْرِمِينَۚ ﴿٦٦﴾ اَلْمُنَافِقُونَ وَالْمُنَافِقَاتُ
بَعْضُهُمْ مِنْ بَعْضٍۢ يَاْمُرُونَ بِالْمُنْكَرِ وَيَنْهَوْنَ
عَنِ الْمَعْرُوفِ وَيَقْبِضُونَ اَيْدِيَهُمْۜ نَسُوا اللّٰهَ فَنَسِيَهُمْۜ
اِنَّ الْمُنَافِقِينَ هُمُ الْفَاسِقُونَ ﴿٦٧﴾ وَعَدَ اللّٰهُ الْمُنَافِقِينَ
وَالْمُنَافِقَاتِ وَالْكُفَّارَ نَارَ جَهَنَّمَ خَالِدِينَ فِيهَاۜ
هِيَ حَسْبُهُمْۚ وَلَعَنَهُمُ اللّٰهُۚ وَلَهُمْ عَذَابٌ مُقِيمٌۙ ﴿٦٨﴾

كَالَّذِينَ

**62**- Ew (munafik) tên, ji we re bi navê Xwedê Teala sond dixwin da ku dilên we xweş bikin. Eger bi rastî ew bawermend in, qayîlbûna Xwedê û Pêxemberê wî pêdivîtir e.

**63**- Erê, ma ew nizanin kî dijminatiya Xwedê û Pêxemberê wî bike, bêguman ji wî re agirê dojehê heye, wê ew her û her tê de bimîne. Ha ev e, riswatî û şermezariya mezin.

**64**- Munafiq ditirsin ku li ser rewşa wan sûreek bê şandin ku nîfaqa di dilên wan de heye (ji bo mumînan) ragihîne. (Resûlê min!) (Ji wan re) bibêje: Hûn tinazên xwe bikin, bêguman Xwedê ya ku hûn jê ditirsin dê derîne rastê.

**65**- (Resûlê min!) Eger tu ji wan bipirsî (we tinazên xwe bi Pêxember û hevalê wî dikir), teqez dê bibêjin: Bêguman her em ketibûn nav xeberdanê û me xwe pê mijûl dikir. Bibêje: Erê ma we tinazên xwe bi Xwedê, ayetên wî û Pêxemberê wî dikir?

**66**- (Resûlê min! ji munafiqan re bibêje:) Mehneyan mekin! Bêguman piştî we bawerî anî dîsa hûn kafir bûn. Eger em civatekê ji we (ku tobe bike) lê biborin jî, em ê civateke ku gunehkar bûn, bidine ezabê.

**67**- Mêr û jinên munafiq ji hev in (di temtêl û durûtiyê de wekhev in), bi ya nelê (munkerî) ferman dikin û rê li ber a baş (marûf) digirin, destên xwe (ji dana zekatê û sedeqeyan) digirin. Wan Xwedê ji bîr kir (ku fermanên wî bi pişguhê xwe ve avêtin), vêca Xwedê jî ew ji bîr kirin (dilovanî û kerema xwe li ser wan birî). Bêguman munafiq jirêderketî bi xwe ne.

**68**- Xwedê Teala, ji munafiqên mêr û jin û ji kafiran re jî bi agirê dojehê peyman daye ku her û her ew ê tê de bimînin, ew besî wan e. Xwedê lanet li wan barandiye û ji wan re ezabekî seraqetî/daîmî heye.

كَالَّذِينَ مِنْ قَبْلِكُمْ كَانُوا اَشَدَّ مِنْكُمْ قُوَّةً
وَاَكْثَرَ اَمْوَالاً وَاَوْلَادًا فَاسْتَمْتَعُوا بِخَلَاقِهِمْ فَاسْتَمْتَعْتُمْ
بِخَلَاقِكُمْ كَمَا اسْتَمْتَعَ الَّذِينَ مِنْ قَبْلِكُمْ بِخَلَاقِهِمْ
وَخُضْتُمْ كَالَّذِى خَاضُوا اُولٰئِكَ حَبِطَتْ اَعْمَالُهُمْ فِى
الدُّنْيَا وَالْاٰخِرَةِ وَاُولٰئِكَ هُمُ الْخَاسِرُونَ ﴿٦٩﴾ اَلَمْ يَأْتِهِمْ
نَبَأُ الَّذِينَ مِنْ قَبْلِهِمْ قَوْمِ نُوحٍ وَعَادٍ وَثَمُودَ وَقَوْمِ اِبْرٰهِيمَ
وَاَصْحَابِ مَدْيَنَ وَالْمُؤْتَفِكَاتِ اَتَتْهُمْ رُسُلُهُمْ بِالْبَيِّنَاتِ
فَمَا كَانَ اللّٰهُ لِيَظْلِمَهُمْ وَلٰكِنْ كَانُوا اَنْفُسَهُمْ يَظْلِمُونَ
﴿٧٠﴾ وَالْمُؤْمِنُونَ وَالْمُؤْمِنَاتُ بَعْضُهُمْ اَوْلِيَاءُ بَعْضٍ
يَأْمُرُونَ بِالْمَعْرُوفِ وَيَنْهَوْنَ عَنِ الْمُنْكَرِ وَيُقِيمُونَ
الصَّلٰوةَ وَيُؤْتُونَ الزَّكٰوةَ وَيُطِيعُونَ اللّٰهَ وَرَسُولَهُ اُولٰئِكَ
سَيَرْحَمُهُمُ اللّٰهُ اِنَّ اللّٰهَ عَزِيزٌ حَكِيمٌ ﴿٧١﴾ وَعَدَ اللّٰهُ
الْمُؤْمِنِينَ وَالْمُؤْمِنَاتِ جَنَّاتٍ تَجْرِى مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ
خَالِدِينَ فِيهَا وَمَسَاكِنَ طَيِّبَةً فِى جَنَّاتِ عَدْنٍ
وَرِضْوَانٌ مِنَ اللّٰهِ اَكْبَرُ ذٰلِكَ هُوَ الْفَوْزُ الْعَظِيمُ ﴿٧٢﴾

**69**- (Gelî munafiqan!) Hûn jî wekî wan ên beriya xwe ku ew ji we bihêztir û xurttir bûn û ji hêla mal û zarokan ve jî ji we pirtir bûn, vêca wan (ji malê dinyayê) bi para xwe pêxweşî kir. Êdî we jî bi para xwe kêfxweşî û pêxweşî kir her wekî yên beriya we bi para xwe kêfxweşî kir. Hûn ketin nav pûçatî û rêşaşiyê çawa ku yên beriya we ketibûnê. Ha ew (xwediyê van saloxan) kar û kiryarên wan, li dinya û axretê pûç bûn û her ew in yên di ziyanê de.

**70**- Ma ji bo wan (munafiqan) xebera qewmên beriya wan nehatiye (ka çi bi serê wan hat), ku ew qewmê Nûh û Ad û Semûd û qewmê Îbrahîm Pêxember, xelkên Medyenê (ku ew gelê Şû'eyb e) û gundên hatin serûbinkirin (ku ew qewmê Lût) in? Pêxemberên wan ji bo wan delîl û mucîzeyên zelal anîbûn (lê belê wan bawerî neanî helak bûn û çûn). Vêca Xwedê ne ew e ku neheqiyê li wan bike, lê belê wan bi xwe neheqî li xwe kiriye.

**71**- Mêr û jinên misliman piştevan û arîkarên hev in, bi qencî û başiyê (li hev) ferman dikin û rê li ber xerabiyê digirin û bi rengê pêdivî nimêj dikin û zekatê didin, guhdariya Xweda û Pêxemberê wî dikin. Ha ev ên ha, Xwedê dê rehmê li wan bike, bêguman Xwedê (di kar û barê xwe de) serdest û karbinecih e.

**72**- Xwedê Teala, ji mêr û jinên misliman re peymana bihiştên wisa daye ku di bin wan de çem diherikin, her û her ew dê li wan bimînin û (peymana) wargehên xweş li bihiştên 'Ednê jî (daye wan) û ya ji hemû (ni'metan) mezintir jî qayîliya Xwedê ye. Ha serfiraziya mezin jî ev e.

Di ayeta pîroz de bêjeya "Merûf" buhurî ku me jî bi "Qencî" wergerand. Lêbelê divê em bizanin ku " Merûf" navlêkekî ewqas fereh e ku di bin xwe de hemû bîrûbaweriyên sipehî û kirinên baş û exlaqên pak digire "Munker" a ku me bi "Neqencî" wergerand tam dijê wê ye ku hemû eqîdeyên pûç, kirinên nebaş û exlaqên riswa dikevine binê.

Xwedê piştî da zanîn ku munafiq dost û arîkarên hev in. Li pey wê ragihand ku mumin jî dost û arîkarên hev in. Herwiha behsa wesfên wan muminan kir ku wan rehma wî heq kiriye û ew wesf jî wiha rêz kirine:

* Mumin di hejêkirin û dostanî û hevkariyê de xwediyê hev in.
* Şîreta qenciyê li hev dikin.
* Ji neqenciyê hev didin paş.
* Bi gotina Xwedê û pêxemberê wî dikin.

يَٓا اَيُّهَا النَّبِيُّ جَاهِدِ الْكُفَّارَ وَالْمُنَافِقِينَ وَاغْلُظْ عَلَيْهِمْۜ
وَمَأْوٰيهُمْ جَهَنَّمُۜ وَبِئْسَ الْمَصِيرُ ﴿٧٣﴾ يَحْلِفُونَ بِاللّٰهِ مَا
قَالُواۜ وَلَقَدْ قَالُوا كَلِمَةَ الْكُفْرِ وَكَفَرُوا بَعْدَ اِسْلَامِهِمْ
وَهَمُّوا بِمَا لَمْ يَنَالُواۚ وَمَا نَقَمُٓوا اِلَّٓا اَنْ اَغْنٰيهُمُ اللّٰهُ
وَرَسُولُهُ مِنْ فَضْلِهٖۚ فَاِنْ يَتُوبُوا يَكُ خَيْرًا لَهُمْۚ وَاِنْ يَتَوَلَّوْا
يُعَذِّبْهُمُ اللّٰهُ عَذَابًا اَلِيمًا فِي الدُّنْيَا وَالْاٰخِرَةِۚ وَمَا لَهُمْ فِي
الْاَرْضِ مِنْ وَلِيٍّ وَلَا نَصِيرٍ ﴿٧٤﴾ وَمِنْهُمْ مَنْ عَاهَدَ اللّٰهَ
لَئِنْ اٰتٰينَا مِنْ فَضْلِهٖ لَنَصَّدَّقَنَّ وَلَنَكُونَنَّ مِنَ الصَّالِحِينَ ﴿٧٥﴾
فَلَمَّٓا اٰتٰيهُمْ مِنْ فَضْلِهٖ بَخِلُوا بِهٖ وَتَوَلَّوْا وَهُمْ مُعْرِضُونَ ﴿٧٦﴾
فَاَعْقَبَهُمْ نِفَاقًا فِي قُلُوبِهِمْ اِلٰى يَوْمِ يَلْقَوْنَهُ بِمَٓا
اَخْلَفُوا اللّٰهَ مَا وَعَدُوهُ وَبِمَا كَانُوا يَكْذِبُونَ ﴿٧٧﴾ اَلَمْ
يَعْلَمُٓوا اَنَّ اللّٰهَ يَعْلَمُ سِرَّهُمْ وَنَجْوٰيهُمْ وَاَنَّ اللّٰهَ عَلَّامُ
الْغُيُوبِۚ ﴿٧٨﴾ اَلَّذِينَ يَلْمِزُونَ الْمُطَّوِّعِينَ مِنَ الْمُؤْمِنِينَ
فِي الصَّدَقَاتِ وَالَّذِينَ لَا يَجِدُونَ اِلَّا جُهْدَهُمْ
فَيَسْخَرُونَ مِنْهُمْۜ سَخِرَ اللّٰهُ مِنْهُمْۘ وَلَهُمْ عَذَابٌ اَلِيمٌ ﴿٧٩﴾

اِسْتَغْفِرْ

**73**- Ey Pêxember! Li hemberî kafir û munafiqan cîhadê bike û li hemberî wan dijwar be. Vehewîngeha wan dojeh e û cihê wan çi pîsecih e!

**74**- Ew bi Xwedê sond dixwin ku wan ev gotin (eger Muhemmed Pêxember bê bila em ji van kerê xwe xerabtir bin) negotiye. Bêguman wan gotina kafirî got û piştî mislimanbûna xwe kafir bûn û qesda tiştê ku bi dest wan ve nehatî (ku kuştina pêxember bû) kirin. Ji bilî ku Xwedê û Pêxemberê wî, ji kerem û qenciya xwe ew (munafiq) dewlemend kirin pê ve ew nikarin pêxemberî eybdar û kêm bikin. Eger ew tobe bikin (û ji munafiqiyê vegerin), ji wan re dê çêtir be û eger ew berê xwe (ji heqiyê) vegerînin, Xwedê li dinya û axretê dê ezabekî dijwar bide wan û ji bo wan li ser erdê ne dost û piştevanek ne jî arîkarek heye.

Berî pêxemberê merhemetê were rûmetê bide Medînê, piraniya gelê wê xizan bûn. Piştî ku ew hate Medînê, ew zengîn bûn. Piştre hinek ji xelkê wê yên munafiq nankorî û şîrheramî kirin û hewldan ku Pêxember bikujin.

**75**- Ji munafiqan hin hene ku peyman bi Xwedê re dan (û gotin): Eger Xwedê, ji xweşdayîn û kerema xwe (mal) bide me, teqez em ê sedeqeyê (û zekatê) bidin û bi sond em ê bibin ji yên qencîkar!

**76**- Vêca çi dema Xwedê ji xweşbexşiya xwe (mal) da wan, nemerdî û qelsî kirin (wekî sond xwarin xêr nekirin), ji peymana xwe vegeriyan û berê xwe (ji fermana Xwedê) vegerandin.

**77**- Êdî ji ber ku peymana xwe bi cih neanîn û ji ber ku derew kirin, Xwedê heta roja ku ew bigihijînê, nifaq (durûtî) xiste dilên wan (ku heta roja nemanê ew dê ji vê nexweşiyê xelas nebin).

**78**- Ma hê jî ew (munafiq) nizanin ku Xwedê nehênî û pistepista wan jî dizane û bêguman Xwedê zanayê nependiyan e.

**79**- Ew (munafiq)ên ku der barê sedeqeyan de yên bawermend eybdar dikin, ew (bawermend) ên ku ji dil û can (pir) sedeqeyan didin û ew ên ku ji bilî ya dikarin pê ve tiştekî din nabînin ku bikin sedeqe. Vêca ew (munafiq) tinazên xwe bi wan dikin. Xwedê jî li ser tinazkeriya wan, wan ceza dike û ji bo wan ezabekî dijwar heye.

اِسْتَغْفِرْ لَهُمْ اَوْ لَا تَسْتَغْفِرْ لَهُمْۜ اِنْ تَسْتَغْفِرْ لَهُمْ سَبْع۪ينَ مَرَّةً
فَلَنْ يَغْفِرَ اللّٰهُ لَهُمْۜ ذٰلِكَ بِاَنَّهُمْ كَفَرُوا بِاللّٰهِ وَرَسُولِه۪ۜ وَاللّٰهُ
لَا يَهْدِي الْقَوْمَ الْفَاسِق۪ينَ ﴿٨٠﴾ فَرِحَ الْمُخَلَّفُونَ بِمَقْعَدِهِمْ
خِلَافَ رَسُولِ اللّٰهِ وَكَرِهُٓوا اَنْ يُجَاهِدُوا بِاَمْوَالِهِمْ وَاَنْفُسِهِمْ
ف۪ي سَب۪يلِ اللّٰهِ وَقَالُوا لَا تَنْفِرُوا فِي الْحَرِّۜ قُلْ نَارُ جَهَنَّمَ اَشَدُّ
حَرًّاۜ لَوْ كَانُوا يَفْقَهُونَ ﴿٨١﴾ فَلْيَضْحَكُوا قَل۪يلًا وَلْيَبْكُوا كَث۪يرًاۚ
جَزَٓاءً بِمَا كَانُوا يَكْسِبُونَ ﴿٨٢﴾ فَاِنْ رَجَعَكَ اللّٰهُ اِلٰى طَٓائِفَةٍ
مِنْهُمْ فَاسْتَأْذَنُوكَ لِلْخُرُوجِ فَقُلْ لَنْ تَخْرُجُوا مَعِيَ اَبَدًا وَلَنْ
تُقَاتِلُوا مَعِيَ عَدُوًّاۜ اِنَّكُمْ رَض۪يتُمْ بِالْقُعُودِ اَوَّلَ مَرَّةٍ فَاقْعُدُوا
مَعَ الْخَالِف۪ينَ ﴿٨٣﴾ وَلَا تُصَلِّ عَلٰٓى اَحَدٍ مِنْهُمْ مَاتَ اَبَدًا وَلَا تَقُمْ
عَلٰى قَبْرِه۪ۜ اِنَّهُمْ كَفَرُوا بِاللّٰهِ وَرَسُولِه۪ وَمَاتُوا وَهُمْ فَاسِقُونَ ﴿٨٤﴾
وَلَا تُعْجِبْكَ اَمْوَالُهُمْ وَاَوْلَادُهُمْۜ اِنَّمَا يُر۪يدُ اللّٰهُ اَنْ يُعَذِّبَهُمْ
بِهَا فِي الدُّنْيَا وَتَزْهَقَ اَنْفُسُهُمْ وَهُمْ كَافِرُونَ ﴿٨٥﴾ وَاِذَٓا اُنْزِلَتْ
سُورَةٌ اَنْ اٰمِنُوا بِاللّٰهِ وَجَاهِدُوا مَعَ رَسُولِهِ اسْتَأْذَنَكَ
اُولُوا الطَّوْلِ مِنْهُمْ وَقَالُوا ذَرْنَا نَكُنْ مَعَ الْقَاعِد۪ينَ ﴿٨٦﴾

**80**- (Resûlê min!) Çi tu daxwaza lêborîna gunehên wan (munafiqan) bikî yan jî daxwaz nekî, eger tu heftê carî lêborîna gunehên wan daxwaz bikî jî, vêca qet Xwedê li gunehên wan nabihure. Ev, ji ber ku bi rastî wan bawerî bi Xwedê û Pêxemberê wî neanîn. Xwedê jî teqez civata jirêderketiyan nayîne ser riya rast.

**81**- Ew ên ku ji bo dijraberiya Pêxemberê Xwedê ji şer mane, bi rûniştina xwe (ya li malê) kêfxweş bûn û nexwestin ku bi malên xwe û canên xwe di riya (dînê) Xwedê de cîhadê bikin, digotin: Di vê germê de dernekevin cîhadê. (Resûlê min! Ji wan munafiqan re) bibêje: Agirê dojehê hê germtir e (hûn ê çawa li ber wê xwe ragirin). Eger ew vê bizanibin (ew ê ji şer xwe nedin paş).

**82**- Êdî bi sedema kar û kiryarên ku kirin, bila hindik bikenin û pir bigirîn.

**83**- (Resûlê min!) Vêca eger Xwedê (ji sefera Tebûkê) tu vegerandî bal refek ji wan(ên ku ji sefera Tebûkê mane), vêca wan jî ji bo derketina (şerekî dî) destûr ji te xwest, ji wan re (wisa) bibêje: Ji vir û pê de hûn ê bi min re qet dernekevin û hûn ê digel min bi tu dijminî re şer nekin! Bêguman hûn cara pêşîn bi rûniştinê qayîl bûn, nexwe hûn jî digel wan ên (ji şer mane) rûniştî bimînin.

**84**- (Resûlê min!) Tu, li ser çi kesî ji wan -ku bimire- nimêj neke û li ser gora wî jî raneweste. Lewra wan bi Xwedê û Pêxemberê wî bawerî neaniye û li ser kufrê mirine.

**85**- Bila malên wan û zarokên wan te ecêbmayî nehêlin. Bêguman Xwedê bes li dinyayê dixwaze wan pê bide ezabdayîn û wan li ser kufrê bimirîne.

**86**- Dema sûreek bihata ji Pêxember re (ku tê de bigota): Baweriyê bi Xwedê bînin û digel Pêxemberê wî cîhadê bikin, ew ên ku xwedî serwet bûn wan ji te destûra neçûnê dixwest û wan wisa digot: Dev ji me berde, em ê digel rûniştiyan bimînin.

رَضُوا بِاَنْ يَكُونُوا مَعَ الْخَوَالِفِ وَطُبِعَ عَلٰى قُلُوبِهِمْ
فَهُمْ لَا يَفْقَهُونَ ﴿٨٧﴾ لٰكِنِ الرَّسُولُ وَالَّذِينَ اٰمَنُوا مَعَهُ
جَاهَدُوا بِاَمْوَالِهِمْ وَاَنْفُسِهِمْ وَاُولٰٓئِكَ لَهُمُ الْخَيْرَاتُ
وَاُولٰٓئِكَ هُمُ الْمُفْلِحُونَ ﴿٨٨﴾ اَعَدَّ اللّٰهُ لَهُمْ جَنَّاتٍ
تَجْرِي مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ خَالِدِينَ فِيهَا ذٰلِكَ الْفَوْزُ
الْعَظِيمُ ﴿٨٩﴾ وَجَٓاءَ الْمُعَذِّرُونَ مِنَ الْاَعْرَابِ لِيُؤْذَنَ لَهُمْ
وَقَعَدَ الَّذِينَ كَذَبُوا اللّٰهَ وَرَسُولَهُ سَيُصِيبُ الَّذِينَ
كَفَرُوا مِنْهُمْ عَذَابٌ اَلِيمٌ ﴿٩٠﴾ لَيْسَ عَلَى الضُّعَفَٓاءِ وَلَا عَلَى
الْمَرْضٰى وَلَا عَلَى الَّذِينَ لَا يَجِدُونَ مَا يُنْفِقُونَ حَرَجٌ
اِذَا نَصَحُوا لِلّٰهِ وَرَسُولِهِ مَا عَلَى الْمُحْسِنِينَ مِنْ سَبِيلٍ وَاللّٰهُ
غَفُورٌ رَحِيمٌ ﴿٩١﴾ وَلَا عَلَى الَّذِينَ اِذَا مَٓا اَتَوْكَ لِتَحْمِلَهُمْ
قُلْتَ لَٓا اَجِدُ مَٓا اَحْمِلُكُمْ عَلَيْهِ تَوَلَّوْا وَاَعْيُنُهُمْ تَفِيضُ
مِنَ الدَّمْعِ حَزَنًا اَلَّا يَجِدُوا مَا يُنْفِقُونَ ﴿٩٢﴾ اِنَّمَا السَّبِيلُ
عَلَى الَّذِينَ يَسْتَاْذِنُونَكَ وَهُمْ اَغْنِيَٓاءُ رَضُوا بِاَنْ يَكُونُوا
مَعَ الْخَوَالِفِ وَطَبَعَ اللّٰهُ عَلٰى قُلُوبِهِمْ فَهُمْ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٩٣﴾

يَعْتَذِرُونَ

**87**- Ew razî bûn ku digel jin, nexweş û kalan li mal bimînin û mor li ser dilên wan hat xistin, vêca ew tênagihîjin.

**88**- Lê belê Pêxember û ew ên ku pê re bawerî anîn, (li hember kafiran) bi malê xwe û canê xwe cîhad kirin. Tevekî qenciyan (li dinyayê serkeftin û li axretê bihişt) ji bo wan in û her ew in ên îflah bûne.

**89**- Xwedê Teala, ji wan re bihiştên wisa amade kirine ku di bin wan de çem diherikin û her û her ew ê li wan bimînin. Ha ew e serfiraziya mezin.

**90**- Bedewiyên ereb hatin (ji bo neçin şer) uzrê xwe xwestin da ku destûra wan bê dayîn. Wan ên ku bawerî bi Xwedê û Pêxemberê wî neanî jî (li mala xwe) rûniştin (û nehatin uzrê xwe nexwestin). Ew ên ku ji wan kafir bûne dê ezabekî dijwar wan bigire.

**91**- Li ser lawaz û nexweşan, li ser ew ên ku tu tiştî nabînin ku ji bo cîhadê xerc bikin tu guneh nîn e (ku ew dernekevin cîhadê), bi egera ew baweriyê bi Xwedê û peyxember wî bînin û guhdariya wan bikin. Li ser ên xwedanhêncet tu guneh nîn e û gazin jî ji wan nayê kirin. Xwedê bi xwe gunehjêbir û dilovîn e.

Ew mirovên lawaz, nexweş û xizan ku li welatê xwe bimînin, rê nedin tevdanê, nûçeyên derew neweşînin û ji malbatên cîhadvan re arîkar bin û karên qenc bikin, ji ber ku ew beşdarî şer nebûne ji wan re tu guneh tune ye. Lêbelê tu fermanek jî tune ye ku çûna şer li wan qedexe bike. Ji wan beşan, yên ku bixwazin ew karin herin şer û xizmetê bikin lê bi şertê ku ji leşker re nebin bela.

**92**- Li ser wan kesan jî (berpirsî û guneh nîn e) ew ên ku dema hatin cem te da ku tu wan siwar bikî (û wan bişînî şer), te ji wan re got: Tiştekî ku ez we lê siwar bikim tune ye. Bi paş ve vegeriyan û ji xemgîniya ku wan tiştek nedît ku pê derkevin cîhadê çavên wan tijî hêstir bûn.

Gelek hevalên pêxember yên xizan, xwestin ku beşdarî Sefera Tebûkê bibin. Lêbelê xwarin, cil û heywaneke ku lê siwar bibin bi dest wan neket. Ji bo vê daxwazê li pêxember vegeriyan. Çi dema wî jî, ji wan re got: Di dest min de tu heywanek tune ye ku ez we lê siwar bikim û bişînim şer. Vêca ji xemgînî girîn û vegeriyan. Ha ev ayeta ku buhurî vê yekê destnîşan dike.

**93**- Bêguman gunehkarî û riya cezadanê bes li ser wan e yên ku ji te destûrê dixwazin (ji bo neyên cîhadê) digel ku ew dewlemend in. Ew qayîl bûn ku digel rûniştiyan (jin û zarok û pîrekalan) bimînin. Xwedê jî mor li ser dilên wan xist, êdî ew (encama mayîna ji şer) nizanin (ka dê bibe çi!).

يَعْتَذِرُونَ اِلَيْكُمْ اِذَا رَجَعْتُمْ اِلَيْهِمْ قُلْ لَا تَعْتَذِرُوا لَنْ
نُؤْمِنَ لَكُمْ قَدْ نَبَّاَنَا اللّٰهُ مِنْ اَخْبَارِكُمْ وَسَيَرَى اللّٰهُ
عَمَلَكُمْ وَرَسُولُهُ ثُمَّ تُرَدُّونَ اِلٰى عَالِمِ الْغَيْبِ وَالشَّهَادَةِ
فَيُنَبِّئُكُمْ بِمَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿٩٤﴾ سَيَحْلِفُونَ بِاللّٰهِ
لَكُمْ اِذَا انْقَلَبْتُمْ اِلَيْهِمْ لِتُعْرِضُوا عَنْهُمْ فَاَعْرِضُوا
عَنْهُمْ اِنَّهُمْ رِجْسٌ وَمَاْوٰيهُمْ جَهَنَّمُ جَزَاءً بِمَا كَانُوا
يَكْسِبُونَ ﴿٩٥﴾ يَحْلِفُونَ لَكُمْ لِتَرْضَوْا عَنْهُمْ فَاِنْ
تَرْضَوْا عَنْهُمْ فَاِنَّ اللّٰهَ لَا يَرْضٰى عَنِ الْقَوْمِ الْفَاسِقِينَ
﴿٩٦﴾ اَلْاَعْرَابُ اَشَدُّ كُفْرًا وَنِفَاقًا وَاَجْدَرُ اَلَّا يَعْلَمُوا
حُدُودَ مَا اَنْزَلَ اللّٰهُ عَلٰى رَسُولِهِ وَاللّٰهُ عَلِيمٌ حَكِيمٌ
﴿٩٧﴾ وَمِنَ الْاَعْرَابِ مَنْ يَتَّخِذُ مَا يُنْفِقُ مَغْرَمًا وَيَتَرَبَّصُ
بِكُمُ الدَّوَائِرَ عَلَيْهِمْ دَائِرَةُ السَّوْءِ وَاللّٰهُ سَمِيعٌ عَلِيمٌ
﴿٩٨﴾ وَمِنَ الْاَعْرَابِ مَنْ يُؤْمِنُ بِاللّٰهِ وَالْيَوْمِ الْاٰخِرِ وَيَتَّخِذُ
مَا يُنْفِقُ قُرُبَاتٍ عِنْدَ اللّٰهِ وَصَلَوَاتِ الرَّسُولِ اَلَا اِنَّهَا قُرْبَةٌ
لَهُمْ سَيُدْخِلُهُمُ اللّٰهُ فِي رَحْمَتِهِ اِنَّ اللّٰهَ غَفُورٌ رَحِيمٌ ﴿٩٩﴾

**94**- Dema hûn (ji cîhadê) li wan vegeriyan, dê ji bo we hênceta xwe aşkera bikin. (Ji wan re) Bibêje: Qet maneyan nekin, em hîç ji we bawer nakin. Bêguman Xwedê salixên we ji me re aşkera kirin. Xwedê û Pêxemberê wî dê karên we bibînin. Paşê hûn ê li Alimê xeybê û ya li ber çav bêne vegerandin, vêca ew ê we agahdar bike bi ya ku we kirî.

**95**- Dema hûn (ji sefera Tebûkê) li wan vegeriyan, ji bo hûn li (guneh û sûcên) wan bibihurin, dê ji we re bi (navê) Xwedê Teala sond bixwin (ku hênceta wan hebûye). Hûn jî berê xwe ji wan vegerînin. Bêguman ew dilpîs in û bi sebunet a ku kirin cihê wan dojeh e.

**96**- Ew ji we re dê sond bixwin da ku hûn ji wan razî bibin, eger hûn ji wan razî bibin jî, lê Xwedê dê ji civata fasiqan qet razî nebe.

Eger ew, we bixapînin jî nikarin Xwedê bi-apînin. Xwedê baş zanê ku ew çi ne, ew, hîç ji civata fasiqan razî nabe. Naxwe razîbûna we ji wan tu fêdeyê nade wan. Lewra Xwedê ji wan xeyîdiye.

**97**- Bedewiyên ereb ji aliyê kafirî û munafiqî ve (ji bajariyan) dijwartir in û bêhtir li wan naxuyê ku bi hukmên ku Xwedê ji Pêxemberê xwe re hinartine ew nizanibin. Xwedê zana ye (bi rewşa wan) û (di kare xwe de) karbinecih e.

**98**- Ji bedewiyên ereb hinek wisa hene ku (di riya dînê Xwedê de) ya xerc dike wê zerar dizane (lewra baweriya wî tun e ku xêra e) û ji bo we çavnêriya belayê dike (da ku ji we xelas bibe). Ew belaya pîs (ya ku ji we re çavnêrî dikin) dê were serê wan. Xwedê Teala bihîzer e, zana ye.

**99**- Ji bedewiyên ereb hin jî hene ku bi Xwedê û roja axretê bawerî tînin û (di xêrê de) ya ku xerc bike wê dike wek navgîna nêzîkbûnê li cem Xwedê û dike wesîle ji bo bidestxistina duayên Pêxember. Agahdar bin! Bêguman ev karê wan ji bo wan (li cem Xwedê) navgîna nêzîkbûnê ye. Xwedê Teala dê wan bixe nav rehma xwe. Bêguman Xwedê Teala gunehveşêr e, dilovîn e.

وَالسَّابِقُونَ الْاَوَّلُونَ مِنَ الْمُهَاجِرِينَ وَالْاَنْصَارِ وَالَّذِينَ
اتَّبَعُوهُمْ بِاِحْسَانٍ رَضِيَ اللّٰهُ عَنْهُمْ وَرَضُوا عَنْهُ وَاَعَدَّ
لَهُمْ جَنَّاتٍ تَجْرِي تَحْتَهَا الْاَنْهَارُ خَالِدِينَ فِيهَا اَبَدًا ذٰلِكَ
الْفَوْزُ الْعَظِيمُ ﴿١٠٠﴾ وَمِمَّنْ حَوْلَكُمْ مِنَ الْاَعْرَابِ مُنَافِقُونَ وَمِنْ
اَهْلِ الْمَدِينَةِ مَرَدُوا عَلَى النِّفَاقِ لَا تَعْلَمُهُمْ نَحْنُ نَعْلَمُهُمْ
سَنُعَذِّبُهُمْ مَرَّتَيْنِ ثُمَّ يُرَدُّونَ اِلٰى عَذَابٍ عَظِيمٍ ﴿١٠١﴾ وَاٰخَرُونَ
اعْتَرَفُوا بِذُنُوبِهِمْ خَلَطُوا عَمَلًا صَالِحًا وَاٰخَرَ سَيِّئًا عَسَى
اللّٰهُ اَنْ يَتُوبَ عَلَيْهِمْ اِنَّ اللّٰهَ غَفُورٌ رَحِيمٌ ﴿١٠٢﴾ خُذْ مِنْ اَمْوَالِهِمْ
صَدَقَةً تُطَهِّرُهُمْ وَتُزَكِّيهِمْ بِهَا وَصَلِّ عَلَيْهِمْ اِنَّ صَلٰوتَكَ سَكَنٌ
لَهُمْ وَاللّٰهُ سَمِيعٌ عَلِيمٌ ﴿١٠٣﴾ اَلَمْ يَعْلَمُوا اَنَّ اللّٰهَ هُوَ يَقْبَلُ
التَّوْبَةَ عَنْ عِبَادِهِ وَيَأْخُذُ الصَّدَقَاتِ وَاَنَّ اللّٰهَ هُوَ التَّوَّابُ
الرَّحِيمُ ﴿١٠٤﴾ وَقُلِ اعْمَلُوا فَسَيَرَى اللّٰهُ عَمَلَكُمْ وَرَسُولُهُ
وَالْمُؤْمِنُونَ وَسَتُرَدُّونَ اِلٰى عَالِمِ الْغَيْبِ وَالشَّهَادَةِ فَيُنَبِّئُكُمْ
بِمَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿١٠٥﴾ وَاٰخَرُونَ مُرْجَوْنَ لِاَمْرِ اللّٰهِ اِمَّا
يُعَذِّبُهُمْ وَاِمَّا يَتُوبُ عَلَيْهِمْ وَاللّٰهُ عَلِيمٌ حَكِيمٌ ﴿١٠٦﴾

وَالَّذِينَ

**100**- Ji muhacir û ensariyan ew ên ku pêşî misliman bûne û ew ên ku bi rindî dane pey wan, Xwedê ji wan razî bûye û ew jî (bi dayîna Xwedê) ji Xwedê razî bûne. Xwedê ji bo wan bihiştên wisa amade kirine ku di bin wan re çem diherikin û her û her, heta bi hetayê ew ê li wan bimînin. Ha serkeftin û rizgariya mezin ev e.

**101**- Ji bedewiyên li hawirdora we û ji gelê Medîneyê jî hinek munafiqên wisan hene ku di munafiqtiyê de pêşketî ne û li serê bi rik in! (Ji ber ku bi konetî tevdigerin) tu wan nizanî (lê belê) em baş wan dizanin. Em ê du caran ezab bidin wan (li dinyayê têkçûyîn û di gorê de jî ezabê gorê) û (roja qiyametê) ew ê li ezabekî mezin bêne vegerandin.

**102**- Civateke din jî (ji ber ku nehatine sefera Tebûkê) gunehên xwe îtîraf kirine, wan karekî qenc têkilî karekî neqenc kiriye (digel ku beşdarî şerên din bûne jî beşdarî vî nebûne û bi derewkarî wan hênceta xwe jî aşkera nekiriye). Eger ew tobe bikin, Xwedê wê tobeya wan qebûl bike. Bêguman Xwedê dunehveşêr e, dilovîn e.

Komek ji wan ên ku neçûbûn sefera Tebûkê, şaşiya xwe fêm kirin. Piştî poşmaniya xwe, xwe bi stûnên mizgeftê ve girêdan û sond xwarin ku heta Pêxember wan veneke ew bi xwe dê xwe venekin. Gava Pêxember ji seferê vegeriya û rewşa wan hîn bû, got: Di bara wan de heta ferman neyê ez jî sond dixwim ku wan venekim. Piştî ev ayet hat, ew ji nû vekirin.

**103**- Ji malên wan zekatê wergire, wan pê (ji gunehan) pak û paqij bike û ji bo wan dua bike. Bêguman duayên te ji wan re dilrihetî ye. Xwedê bihîzer e, zana ye.

**104**- Ma hê jî ew nizanin ku Xwedê her ew e yê ku ji bendeyê xwe tobê dipejirîne û sedeqeyan werdigire/qebûl dike. Bêguman Xwedê her ew e yê tobepejrên, yê dilovîn.

**105**- (Ji wan ên ku tobe kirin re) Bibêje: Hûn (çi karê bi we xweş bê) bikin, vêca Xwedê, Pêxemberê wî û bawermend dê karên we bibînin. Piştre hûn ê li alimê bi ya li ber çav û nependî bên vegerandin. Vêca Ew bi kar û kiryarên ku we kirine dê we agahdar bike.

**106**- (Ji wan ên ku neçûne sefera Tebûkê) hinekên din jî hene ku ew li hêviya fermana Xwedê hatine hiştin. Xwedê Teala, yan wê ezab bide wan an jî dê tobeya wan qebûl bike. Xwedê Teala zana û karbinecih e.

وَالَّذِينَ اتَّخَذُوا مَسْجِدًا ضِرَارًا وَكُفْرًا وَتَفْرِيقًا
بَيْنَ الْمُؤْمِنِينَ وَاِرْصَادًا لِمَنْ حَارَبَ اللّٰهَ وَرَسُولَهُ مِنْ
قَبْلُ وَلَيَحْلِفُنَّ اِنْ اَرَدْنَا اِلَّا الْحُسْنٰى وَاللّٰهُ يَشْهَدُ اِنَّهُمْ
لَكَاذِبُونَ ١٠٧ لَا تَقُمْ فِيهِ اَبَدًا لَمَسْجِدٌ اُسِّسَ عَلَى التَّقْوٰى
مِنْ اَوَّلِ يَوْمٍ اَحَقُّ اَنْ تَقُومَ فِيهِ فِيهِ رِجَالٌ يُحِبُّونَ اَنْ
يَتَطَهَّرُوا وَاللّٰهُ يُحِبُّ الْمُطَّهِّرِينَ ١٠٨ اَفَمَنْ اَسَّسَ بُنْيَانَهُ
عَلٰى تَقْوٰى مِنَ اللّٰهِ وَرِضْوَانٍ خَيْرٌ اَمْ مَنْ اَسَّسَ بُنْيَانَهُ
عَلٰى شَفَا جُرُفٍ هَارٍ فَانْهَارَ بِهِ فِي نَارِ جَهَنَّمَ وَاللّٰهُ
لَا يَهْدِي الْقَوْمَ الظَّالِمِينَ ١٠٩ لَا يَزَالُ بُنْيَانُهُمُ الَّذِي بَنَوْا
رِيبَةً فِي قُلُوبِهِمْ اِلَّا اَنْ تَقَطَّعَ قُلُوبُهُمْ وَاللّٰهُ عَلِيمٌ
حَكِيمٌ ١١٠ اِنَّ اللّٰهَ اشْتَرٰى مِنَ الْمُؤْمِنِينَ اَنْفُسَهُمْ
وَاَمْوَالَهُمْ بِاَنَّ لَهُمُ الْجَنَّةَ يُقَاتِلُونَ فِي سَبِيلِ اللّٰهِ
فَيَقْتُلُونَ وَيُقْتَلُونَ وَعْدًا عَلَيْهِ حَقًّا فِي التَّوْرٰيةِ وَالْاِنْجِيلِ
وَالْقُرْاٰنِ وَمَنْ اَوْفٰى بِعَهْدِهِ مِنَ اللّٰهِ فَاسْتَبْشِرُوا
بِبَيْعِكُمُ الَّذِي بَايَعْتُمْ بِهِ وَذٰلِكَ هُوَ الْفَوْزُ الْعَظِيمُ ١١١

**107**- Ew (munafiq) ên ku wan mizgeftek ava kir da ku pê zerarê bigihînin mislimanan, kafiriyê bihêz bikin û dubendiyê têxin nav bawermendan û çavnêriya wî mirovî dikin ku hê berî vêga şerê Xwedê û Pêxemberê wî kiriye. Ew sond dixwin (û dibêjin ku) me bi vê ji qenciyê pê ve tiştekî din nexwestiye. Hal ev e ku Xwedayê pak û bilind, şahdeyiyê dide ku bêguman ew derewkar in.

**108**- Tu car lê raneweste û tê de nimêj meke! Mizgefteke ku ji roja pêşî ve li ser bingeha teqwayê hatiye avakirin, teqez rasttir e ku tu tê de nimêj bikî. Di wê de hin zilamên welê hene ku hez dikin xwe (ji gunehan) paqij bikin. Xwedê Teala jî, ji yê xwe paqij dike, hez dike.

**109**- Erê ma ew kesê ku riknê avahiya (dînê) xwe li ser teqwadarî û razîbûna ji Xwedê ava kiriye çêtir e, yan ma ew ê ku avahiya xwe li ser keviya kendalekî li ber hilweşînê ava kiriye çêtir e? Vêca bi wê re ew jî dike hilweşe û bikeve agirê dojehê. Xwedê civata sitemkar rasterê nake.

**110**- Ew avahiya ku wan lêkiribû heta (bimirin) û dilên wan parçe bibe jî, ew ê her di dilê wan de bibe guman (û nîfaq). Xwedê Teala (di kar û barê xwe de) Zana û Karbinecih e.

**111**- Bêguman Xweda, ji bawermendan malên wan û canên wan kiriye, ku beranberî wê teqez bihişt ji wan re ye. Ew di riya Xweda Teala de şer dikin, dikujin û têne kuştin. (Ev) li ser Xweda peymaneke rastîn e ku di Tewrat, Incîl û Quranê de (daye bawermendan). Ma ji Xweda pê ve kî heye ku peymana xwe bi cih bîne? Nexwe ji bo vê danûstandina ku we bi Xweda re kirî, kêfxweş bibin. Ha ev e, ew serfirazî û rizgariya mezin.

Li Bajarê Mekkê, di hengava Peymana Eqebeyê de wextê ku heftê (70) ensariyan peyman dane Pêxember, ji nav wan Ebdullah kurê Rewahe got: Hey Qasidê Xwedê! Şertên te û Xwedayê te çi ne? Resûlê Ekrem jê re got: “Şertê min ji bo Xwedayê min ev e ku hûn ji wî re îbadetê bikin û tiştekî jê re nekin hevpişk. Şertê min di bara min de jî ev e ku hûn çawa canê xwe û malê xwe biparêzin, eynî wisan min jî biparêzin.” Dîsa pirsa xwe dubare kir: Ger em vê bikin ji me re çi heye. Resûlê Ekrem jê re got: “Bihişt heye.” Wan jî got: Heylo çi danûstandineke bi kar e! Em, ne ji vê vedigerin, ne jî dixwazin jê vegerin. Vêca ev ayeta ku buhurî di bara wan de daket.

التَّٓائِبُونَ الْعَابِدُونَ الْحَامِدُونَ السَّٓائِحُونَ الرَّاكِعُونَ
السَّاجِدُونَ الْاٰمِرُونَ بِالْمَعْرُوفِ وَالنَّاهُونَ عَنِ الْمُنْكَرِ
وَالْحَافِظُونَ لِحُدُودِ اللّٰهِ وَبَشِّرِ الْمُؤْمِنِينَ ١١٢ مَا كَانَ
لِلنَّبِيِّ وَالَّذِينَ اٰمَنُٓوا اَنْ يَسْتَغْفِرُوا لِلْمُشْرِكِينَ وَلَوْ
كَانُٓوا اُو۬لِي قُرْبٰى مِنْ بَعْدِ مَا تَبَيَّنَ لَهُمْ اَنَّهُمْ اَصْحَابُ
الْجَحِيمِ ١١٣ وَمَا كَانَ اسْتِغْفَارُ اِبْرٰهِيمَ لِاَبِيهِ اِلَّا عَنْ
مَوْعِدَةٍ وَعَدَهَٓا اِيَّاهُ فَلَمَّا تَبَيَّنَ لَهُٓ اَنَّهُ عَدُوٌّ لِلّٰهِ تَبَرَّاَ
مِنْهُ اِنَّ اِبْرٰهِيمَ لَاَوَّاهٌ حَلِيمٌ ١١٤ وَمَا كَانَ اللّٰهُ لِيُضِلَّ
قَوْمًا بَعْدَ اِذْ هَدٰيهُمْ حَتّٰى يُبَيِّنَ لَهُمْ مَا يَتَّقُونَ اِنَّ
اللّٰهَ بِكُلِّ شَيْءٍ عَلِيمٌ ١١٥ اِنَّ اللّٰهَ لَهُ مُلْكُ السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضِ يُحْيِي وَيُمِيتُ وَمَا لَكُمْ مِنْ دُونِ اللّٰهِ
مِنْ وَلِيٍّ وَلَا نَصِيرٍ ١١٦ لَقَدْ تَابَ اللّٰهُ عَلَى النَّبِيِّ
وَالْمُهَاجِرِينَ وَالْاَنْصَارِ الَّذِينَ اتَّبَعُوهُ فِي
سَاعَةِ الْعُسْرَةِ مِنْ بَعْدِ مَا كَادَ يَزِيغُ قُلُوبُ فَرِيقٍ
مِنْهُمْ ثُمَّ تَابَ عَلَيْهِمْ اِنَّهُ بِهِمْ رَؤُفٌ رَحِيمٌ ١١٧

وَعَلَى

**112**- (Ew ên ku ev danûstandin kirin) ji hemû gunehan tobedar in, bi her rengî îbadetkar in, di her rewşê de spasdar in, rojîgir û nimêjkar in, bi qenciyan fermande ne û ji nebaşiyan rêgir in û ji bo hukm û fermanên Xweda parêzkar in. (Ey Pêxember) mizgînê bide bawermendan!

**113**- Ji bo Pêxember û ew ên ku wan bawerî anî, ne durist e ku ji bo muşrikan lêborînê bixwazin -çendî ew lêzimên wan jî bin- piştî ku ji wan re diyar bû ku ew xelkê dojehê ne.

**114**- Daxwaza gunehjêbirina Îbrahîm Pêxember ji bo bavê xwe bes ji ber peymanekê bû ku dabû bavê xwe (dema jê re got: Bi rastî ez ê ji bo te daxwaza lêborîna te ji Xwedê bikim). Lê belê çi dema ji Îbrahîmî re aşkera bû ku bavê wî dijminê Xweda ye, (jê re lêborîn daxwaz nekir û ) xwe jê dûr kir. Bêguman Îbrahîm mirovekî (li ber Xwedê) zêde bi lavelav, berbihêr û sebirkêş bû.

**115**- Xwedê Teala, tu qewman gumrah û berze nake -piştî ku ew rasterê kirin- heta ji bo wan aşkera neke ya ku xwe jê biparêzin. Bêguman Xweda bi her tiştî dizane.

**116**- Bêguman mulkê erd û asîmanan her ê Xwedê ye. Ew hem sax dike hem jî dimirîne. Ji bo we, ji bilî Xwedê ne dost û piştevanek ne jî arîkarek heye.

**117**- Sond be, Xweda li Pêxember, muhacir û ensariyan bihuriye, ew ên ku di çaxê zor de -piştî hindik mabû ku dilê celebekî ji wan vegere- dane pey wî. Piştre Xwedê tobeya wan qebûl kir, gunehên wan jêbirin. Bêguman Xwedê, ji bo wan birehm e, dilovîn e.

Gava Resûlê Ekrem dikir derkevê sefera Tebûkê, munafiq hatin, bi derew uzrê xwe jê re eşkere kirin û destûra ku dernekevin seferê jê xwestin. Wî jî destûra wan da. Di vê dabaşê de ayeta 43an daket û rexne li Pêxember girt. Hin bawermend bi propaxanda munafiqan xapiyabûn, guman ketibû dilê wan jî. Piştre wan tobe kir. Ha ev ayet dide zanîn ku Xwedê, tobeya Pêxember û wan mislimanan qebûl kiriye. Li gorî hatiye ragihandin, Ebû Xeysemeyê ensarî jî derneketibû vê seferê û li mala xwe mabû. Çi dema gihabû nava bostanê xwe, jineke wî ya pir xweşik û ciwan hebû. Jê re li ber sihê erd rast kiribû, hesîr danîbû serê, xurme û ava sar dabûyê. Wî jî lê meyzand û wiha got: Min sihek hênik, xurmeyên gihayî, ava sar û jineka bedew û ciwan heye, Pêxember jî li ber germî û bayê ye! Ev hîç nexêr e. Li vir şaşiya xwe fêm kir. Vêca rabû hêştira xwe amade kir û rahişt şûr û rimê xwe û wekî bayê da xwe û bi lez kete rê. Pêxember li pey xwe meyzand ku wa ye li pişt leylanê siwarek tê û got: De tu Ebû Xeyseme be! Vêca ew Ebû Xeyseme bû, Resûlê Xwedê bi wî pir xweşhal bû û lêborîna gunehên wî ji Xwedê xwest.

وَعَلَى الثَّلٰثَةِ الَّذٖينَ خُلِّفُوا حَتّٰٓى اِذَا ضَاقَتْ عَلَيْهِمُ الْاَرْضُ
بِمَا رَحُبَتْ وَضَاقَتْ عَلَيْهِمْ اَنْفُسُهُمْ وَظَنُّٓوا اَنْ لَا مَلْجَاَ
مِنَ اللّٰهِ اِلَّٓا اِلَيْهِ ثُمَّ تَابَ عَلَيْهِمْ لِيَتُوبُوا اِنَّ اللّٰهَ هُوَ
التَّوَّابُ الرَّحٖيمُ ﴿١١٨﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذٖينَ اٰمَنُوا اتَّقُوا اللّٰهَ
وَكُونُوا مَعَ الصَّادِقٖينَ ﴿١١٩﴾ مَا كَانَ لِاَهْلِ الْمَدٖينَةِ وَمَنْ
حَوْلَهُمْ مِنَ الْاَعْرَابِ اَنْ يَتَخَلَّفُوا عَنْ رَسُولِ اللّٰهِ وَلَا
يَرْغَبُوا بِاَنْفُسِهِمْ عَنْ نَفْسِهٖ ذٰلِكَ بِاَنَّهُمْ لَا يُصٖيبُهُمْ ظَمَاٌ
وَلَا نَصَبٌ وَلَا مَخْمَصَةٌ فٖي سَبٖيلِ اللّٰهِ وَلَا يَطَؤُنَ مَوْطِئًا
يَغٖيظُ الْكُفَّارَ وَلَا يَنَالُونَ مِنْ عَدُوٍّ نَيْلًا اِلَّا كُتِبَ
لَهُمْ بِهٖ عَمَلٌ صَالِحٌ اِنَّ اللّٰهَ لَا يُضٖيعُ اَجْرَ الْمُحْسِنٖينَ ﴿١٢٠﴾
وَلَا يُنْفِقُونَ نَفَقَةً صَغٖيرَةً وَلَا كَبٖيرَةً وَلَا يَقْطَعُونَ
وَادِيًا اِلَّا كُتِبَ لَهُمْ لِيَجْزِيَهُمُ اللّٰهُ اَحْسَنَ مَا كَانُوا
يَعْمَلُونَ ﴿١٢١﴾ وَمَا كَانَ الْمُؤْمِنُونَ لِيَنْفِرُوا كَٓافَّةً
فَلَوْلَا نَفَرَ مِنْ كُلِّ فِرْقَةٍ مِنْهُمْ طَٓائِفَةٌ لِيَتَفَقَّهُوا فِي الدّٖينِ
وَلِيُنْذِرُوا قَوْمَهُمْ اِذَا رَجَعُٓوا اِلَيْهِمْ لَعَلَّهُمْ يَحْذَرُونَ ﴿١٢٢﴾

**118**- Her wisa tobeya wan her sê kesên ku ji sefera Tebukê bi paş ve mabûn qebûl kir (ku ew Ke'b kurê Malik, Hîlal kurê Umeyye û Murare kurê Rebî' e). Bi rewşeke wisa ku erd digel firehiya xwe li wan teng bû û bêhn li wan çikiya. Wan yeqîn kir ku ji ber (ezabê) Xwedê çi penah û parêzer tun e, ji bilî ku xwe biavêjine ber penaha Xwedê Teala. Paşê, Xwedê ew li ser tobê muweffeq kirin da ku li ser tobeya xwe rawestin. Bêguman Xwedê, her ew e yê tobepejrên, ê dilovîn.

**119**- Hey gelî yên ku bawerî anîne! Xwe ji (ezabê) Xweda Teala biparêzin û bibin digel rast û duristan.

**120**- Ne durist e ji bo xelkê Medîneyê û bedewiyên ereb ên li hawirdora Medîneyê ku ji Qasidê Xwedayê xwe bi paş de bimînin û canê xwe ji canê Pêxember xweştir bivên. Lewra di riya Xwedê de çi têhnatî, çi westanî û çi birçîtî ku bigihîje wan û biçine her cihê ku hêrsa kafiran bîne û çi li hemberê dijminekî serkeftinekê bi dest bixin, her ji bo wan karekî qenc pê tê nivîsîn. Bêguman Xwedê xelata qencîkarên rast û durist winda nake.

**121**- ( Di riya Xwedê de) Ew, çi hindik çi jî pir bidin û çi newala ku ew tê re bibihurin, her ji wan re xêr tê nivîsandin, da ku Xwedê ji ya ku dikirin, bi ya xweştirîn wan xelat bike.

**122**- Jixwe ne mimkun e ku bawermend hemû pêk ve derkevin cîhadê. Bila ji her komekê ji wan civatek derkeve da ku di emrê dîn de zana bibin û dema li gelê xwe yên ku ligel wan neçûne bizivirin û wan agahdar bikin, ji bo ku ew jî xwe biparêzin.

Li gorî ku ev ayeta pîroz dide zanîn; ne mimkun e ku xelkek bi hemû kesên xwe ve derkeve şer. Di haletê şer de, ji milletekî ew ên ku perwerdeya şer û çekan dîtibin bila dest bavêjin çekan û biberizin dijmin. Mirovên din jî xebatên zanînî û çalakiyên çandî bidin dewamkirin. Nexasim jî ilmên dînî û fiqhî yên ku berê civatê bidin rêya rast. Divê milletek zanayên xwe perwerde bike da ku ew jî ferman û qedexeyên Xwedê hînî mirovan bikin. Mumkin e ku demeke dirêj şer dewam bike. Di vê rewşa awarte de ji bo milletek karibe xwe li ser piyê xwe bigre divê, zana û pisporên xwe nexasim ên dînî perwerde bike da ku hêzên xwe yên çekdar û şervanên xwe xwedî bike û nehêle bêne şikandin. Heke mecbûr nebe ne rast e ku milletek mamoste û zanayên xwe nemaze fiqihzanên xwe derxe qada şer, lewra cîhada bingehîn xebata zanînî ye. Hîç guman nîn e ku milletek di qada zanîn û teknîkê de li paş mabe, çendî di qada leşkerî de xurt be jî dê zû bihelişe. Lêbelê milletê ku di warê zanîn û teknîkê de li pêş be çendan di warê leşkerî de lawaz be jî, kare di demeke kurt de kêmasiyên xwe temam bike. Ji ber vê yekê cîhada zanînî ji cîhada çekan girîngtir e.


سُورَةُ التَّوْبَةِ ٢٠٨

يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا قَاتِلُوا الَّذ۪ينَ يَلُونَكُمْ مِنَ الْكُفَّارِ
وَلْيَجِدُوا ف۪يكُمْ غِلْظَةً وَاعْلَمُٓوا اَنَّ اللّٰهَ مَعَ الْمُتَّق۪ينَ ١٢٣
وَاِذَا مَٓا اُنْزِلَتْ سُورَةٌ فَمِنْهُمْ مَنْ يَقُولُ اَيُّكُمْ زَادَتْهُ هٰذِه۪ٓ
ا۪يمَانًا فَاَمَّا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا فَزَادَتْهُمْ ا۪يمَانًا وَهُمْ يَسْتَبْشِرُونَ
١٢٤ وَاَمَّا الَّذ۪ينَ ف۪ي قُلُوبِهِمْ مَرَضٌ فَزَادَتْهُمْ رِجْسًا اِلٰى
رِجْسِهِمْ وَمَاتُوا وَهُمْ كَافِرُونَ ١٢٥ اَوَلَا يَرَوْنَ اَنَّهُمْ
يُفْتَنُونَ ف۪ي كُلِّ عَامٍ مَرَّةً اَوْ مَرَّتَيْنِ ثُمَّ لَا يَتُوبُونَ وَلَا
هُمْ يَذَّكَّرُونَ ١٢٦ وَاِذَا مَٓا اُنْزِلَتْ سُورَةٌ نَظَرَ بَعْضُهُمْ
اِلٰى بَعْضٍ هَلْ يَرٰيكُمْ مِنْ اَحَدٍ ثُمَّ انْصَرَفُوا صَرَفَ اللّٰهُ
قُلُوبَهُمْ بِاَنَّهُمْ قَوْمٌ لَا يَفْقَهُونَ ١٢٧ لَقَدْ جَٓاءَكُمْ رَسُولٌ
مِنْ اَنْفُسِكُمْ عَز۪يزٌ عَلَيْهِ مَا عَنِتُّمْ حَر۪يصٌ عَلَيْكُمْ
بِالْمُؤْمِن۪ينَ رَؤُ۫فٌ رَح۪يمٌ ١٢٨ فَاِنْ تَوَلَّوْا فَقُلْ حَسْبِيَ اللّٰهُ لَٓا
اِلٰهَ اِلَّا هُوَ عَلَيْهِ تَوَكَّلْتُ وَهُوَ رَبُّ الْعَرْشِ الْعَظ۪يمِ ١٢٩

سُورَةُ يُونُسَ مَكِّيَّةٌ وَهِيَ
مِائَةٌ وَتِسْعُ اٰيَاتٍ

بِسْمِ اللّٰهِ

**123**- Hey gelî yên ku bawerî anîne! Şerê wan kafiran ên ku nêzîkî we ne bikin û bila ew di we de bihêzî û mêrxasiyê bibînin, bizanin ku bêguman Xweda Teala digel teqwadaran e.

**124**- Çi dema (ji Quranê) sûretek bête xwarê, vêca hinek ji wan (munafiqan) dibêjin: Vî (sûretî) baweriya kê ji we zêde kir? (bibêje: Erê) Heçî ew ên ku bawerî anîn, vêca baweriya wan zêde kir û ew pê dilşad û kêfxweş dibin.

**125**- Heçî ew ên ku di dilên wan de nexweşî (ya kufr û nîfaqê) heye, (vî sûreyî) kufr û nîfaq li wan zêde kirin û ew ê li ser kafiriyê bimirin.

**126**- Qey ew (munafiq) nabînin ku her salê carekê yan jî du caran (bi belayên cur bi cur) têne îmtihankirin? Piştre jî ne tobe dikin ne jî ji xwe re îbret digirin.

**127**- Dema (der barê munafiqan de) sûreyek (ji Quranê) bê xwarê, hin ji wan li hinan dinêrin (û dibêjin): Ma kesek (ji mislimanan) we dibîne; paşê dertên û diçin. Xwedê dilê wan (ji rastiyê) vegerand, lewra ew miletekî bêfehm in û di heqiyê naginîjin.

**128**- Sond be, pêxemberek ji nav we, ji bo we hatiye ku zehmetkêşiya we li ser wî giran e, li ser rasterêkirina we rijd e û ji bo bawermendan dilnerm û dilovîn e.

Di vê ayeta pîroz de, Xwedê wesfê Reûf û Rehîmîyê daye pêxemberê xwe. Ji wan pêxemberên pêşîn tu kes bi hev re nebûye xuyageha van her du wesfan. **Reûf**: Dilnerm e. **Rehîm**: Dilovîn e.

**129**- (Resûlê min!) Eger ew berê xwe (ji baweriya bi te) vegerînin, bibêje: Xweda besî min e, ji wî pê ve tu Xweda nîn in, min pişta xwe pê mikûm û germ kir, Ew e, xwedanê erşê mezin.

## SÛREYÊ YÛNUS

Sûreyê Yûnus 109 (sed û neh) ayet e. Ayeta 40an, 94an, 95an û 96an li Medînê û ayetên din jî li Mekkê daketine. Ji ber ku di ayeta 98an de dabaşa Gelê Yûnus hatiye kirin, ji vî sûreyî re Sûreyê Yûnus, hatiye gotin.

Sûreyê Yûnus, pir qîmet daye bingehên Eqîdeya Îslamê; baweriya bi Xwedê, kitêb, pêxember, saxbûna piştî mirinê û xelat û celatê. Sûret, gazî li mirovan dike ku baweriyê bi wehya îlahî -Qur'ana Mecîd- bînin. Sûret, di serî de behsa wehyê û Pêxember dike, eşkere dike ku şandina pêxemberan ji nava xelkê wan qanûneke îlahî ye û ev her demê pêk hatiye.

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ

الٓرٰ تِلْكَ اٰيَاتُ الْكِتَابِ الْحَك۪يمِ ﴿١﴾ اَكَانَ لِلنَّاسِ عَجَبًا
اَنْ اَوْحَيْنَٓا اِلٰى رَجُلٍ مِنْهُمْ اَنْ اَنْذِرِ النَّاسَ وَبَشِّرِ الَّذ۪ينَ
اٰمَنُٓوا اَنَّ لَهُمْ قَدَمَ صِدْقٍ عِنْدَ رَبِّهِمْ قَالَ الْكَافِرُونَ اِنَّ
هٰذَا لَسَاحِرٌ مُب۪ينٌ ﴿٢﴾ اِنَّ رَبَّكُمُ اللّٰهُ الَّذ۪ي خَلَقَ السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضَ ف۪ي سِتَّةِ اَيَّامٍ ثُمَّ اسْتَوٰى عَلَى الْعَرْشِ يُدَبِّرُ الْاَمْرَ
مَا مِنْ شَف۪يعٍ اِلَّا مِنْ بَعْدِ اِذْنِه۪ ذٰلِكُمُ اللّٰهُ رَبُّكُمْ فَاعْبُدُوهُ
اَفَلَا تَذَكَّرُونَ ﴿٣﴾ اِلَيْهِ مَرْجِعُكُمْ جَم۪يعًا وَعْدَ اللّٰهِ حَقًّا اِنَّهُ
يَبْدَؤُا الْخَلْقَ ثُمَّ يُع۪يدُهُ لِيَجْزِيَ الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ
بِالْقِسْطِ وَالَّذ۪ينَ كَفَرُوا لَهُمْ شَرَابٌ مِنْ حَم۪يمٍ وَعَذَابٌ
اَل۪يمٌ بِمَا كَانُوا يَكْفُرُونَ ﴿٤﴾ هُوَ الَّذ۪ي جَعَلَ الشَّمْسَ
ضِيَٓاءً وَالْقَمَرَ نُورًا وَقَدَّرَهُ مَنَازِلَ لِتَعْلَمُوا عَدَدَ
السِّن۪ينَ وَالْحِسَابَ مَا خَلَقَ اللّٰهُ ذٰلِكَ اِلَّا بِالْحَقِّ يُفَصِّلُ
الْاٰيَاتِ لِقَوْمٍ يَعْلَمُونَ ﴿٥﴾ اِنَّ فِي اخْتِلَافِ الَّيْلِ وَالنَّهَارِ وَمَا
خَلَقَ اللّٰهُ فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ لَاٰيَاتٍ لِقَوْمٍ يَتَّقُونَ ﴿٦﴾

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn**

**1- Elîf. Lam. Ra.**

Ev a em ji we re dixwînin, ayetên kitêba muhkem in (a ku ji her kêmasî û zêdehiyê parastî û ji bendeyên xwe re bi berfirehî diyar kiriye).

2- Erê ma bi mirovan ecêb tê ku me ji bo zilamekî ji nav wan peyam hinart; (Me jê re got) mirovan hişyar bike (û ji roja qiyametê wan bitirsîne) û mizgînê bide yên ku wan bawerî anî ku ji bo wan li cem Xwedayê wan meqamekî bilind heye. Kafiran got: Bêguman ev sêrbazekî aşkera ye!

3- Bêguman Xwedayê we Ellah Teala ye, ew ê ku di şeş rojan de erd û asîman afirandin, paşê li ser erşê xwe bilind bû (bilindbûneke babet û hêjayî mezinahiya wî), tevdîra kar û baran dike, bêyî ku destûra wî hebe hîç tu kes nikare bibe mehdervan. Ha, ew (afirîner, rêvebir) perwerdegarê we Ellah Teala ye. Nexwe jê re îbadetê bikin. Erê ma (digel van hemû delîlan jî) qey hê jî hûn nafikirin (ku her ew e babetê îbadetê)?!

4- (Gelî mirovan! Roja qiyametê) Vegera we tevan bes bi bal Xwedê ve ye. Ev veger, bêguman sozek e ji cem Xwedê ye û rast e. Lewra Xwedê pêşî mirovan diafirîne, piştre dê wan li xwe vegerîne da ku bi edaletî wan ên ku bawerî anîn û karên qenc kirin xelat bike û ew ên ku kafir bûne jî, bi sedema kafiriya ku kirin ji bo wan vexwarineke ji ava kelî û ezabekî cansoj heye.

5- Xwedê ye, ew ê ku roj kiriye çira, heyv jî kiriye ronahî û kiriye qonax bi qonax da ku hûn (bi roj û heyvê) hejmara salan û hesêb bizanin. Xwedê ev, bes li ser rastî (û hîkmetekê) afirandin. Xwedê, ji bo civateke bîrewer ayetên xwe aşkera dike.

6- Bêguman di li pey hatina şev û rojê de (û di kurtbûn û direjbûna wan de) û ya ku Xwedê li erd û asîmananê afirandin ji bo civatekê ku xwe (ji înkara Wî) biparêze, belge û nîşan hene (ku qudret, mezinatî û yekîtiya Xwedê didin zanîn).

اِنَّ الَّذ۪ينَ لَا يَرْجُونَ لِقَٓاءَنَا وَرَضُوا بِالْحَيٰوةِ الدُّنْيَا وَاطْمَاَنُّوا
بِهَا وَالَّذ۪ينَ هُمْ عَنْ اٰيَاتِنَا غَافِلُونَۙ ﴿٧﴾ اُو۬لٰٓئِكَ مَأْوٰيهُمُ
النَّارُ بِمَا كَانُوا يَكْسِبُونَ ﴿٨﴾ اِنَّ الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ
يَهْد۪يهِمْ رَبُّهُمْ بِا۪يمَانِهِمْۚ تَجْر۪ي مِنْ تَحْتِهِمُ الْاَنْهَارُ ف۪ي جَنَّاتِ
النَّع۪يمِ ﴿٩﴾ دَعْوٰيهُمْ ف۪يهَا سُبْحَانَكَ اللّٰهُمَّ وَتَحِيَّتُهُمْ ف۪يهَا
سَلَامٌۚ وَاٰخِرُ دَعْوٰيهُمْ اَنِ الْحَمْدُ لِلّٰهِ رَبِّ الْعَالَم۪ينَ ﴿١٠﴾ وَلَوْ
يُعَجِّلُ اللّٰهُ لِلنَّاسِ الشَّرَّ اسْتِعْجَالَهُمْ بِالْخَيْرِ لَقُضِيَ اِلَيْهِمْ
اَجَلُهُمْۜ فَنَذَرُ الَّذ۪ينَ لَا يَرْجُونَ لِقَٓاءَنَا ف۪ي طُغْيَانِهِمْ يَعْمَهُونَ
﴿١١﴾ وَاِذَا مَسَّ الْاِنْسَانَ الضُّرُّ دَعَانَا لِجَنْبِه۪ٓ اَوْ قَاعِدًا اَوْ
قَٓائِمًاۚ فَلَمَّا كَشَفْنَا عَنْهُ ضُرَّهُ مَرَّ كَاَنْ لَمْ يَدْعُنَٓا اِلٰى
ضُرٍّ مَسَّهُۜ كَذٰلِكَ زُيِّنَ لِلْمُسْرِف۪ينَ مَا كَانُوا يَعْمَلُونَ
﴿١٢﴾ وَلَقَدْ اَهْلَكْنَا الْقُرُونَ مِنْ قَبْلِكُمْ لَمَّا ظَلَمُواۙ
وَجَٓاءَتْهُمْ رُسُلُهُمْ بِالْبَيِّنَاتِ وَمَا كَانُوا لِيُؤْمِنُواۜ كَذٰلِكَ
نَجْزِي الْقَوْمَ الْمُجْرِم۪ينَ ﴿١٣﴾ ثُمَّ جَعَلْنَاكُمْ خَلَٓائِفَ
فِي الْاَرْضِ مِنْ بَعْدِهِمْ لِنَنْظُرَ كَيْفَ تَعْمَلُونَ ﴿١٤﴾

وَاِذَا

**7**- Bêguman ew ên ku (piştî mirinê) dîtina Me hêvî nakin, bi jiyana dinyayê qayîl bûne, bi xweşiyên wê piştrast bûne û ew ên ku haya wan ji ayetên me nemane...

**8**- Ha ew, ji ber gunehên ku kirine, cihê wan agir e.

**9**- Herçî ew ên ku bawerî anîn û karên qenc kirine, Xwedayê wan bi sedema îmana wan, dê wan bigihîne bihiştên pêxweşbûn û dilxweşbûnê ku di bin wan re çem diherikin.

**10**- Dua û gaziya wan di bihiştê de ev e: Xwedayê me, em te ji hemû kêmasiyan pak didêrin! Selametxwestin û pêşwazîkirina wan (ji hev re) 'bes silav' e. Duaya wan a paşî jî ev e: Hemd, ji bo Ellah Teala ye ku ew perwerdegarê alemê ye.

**11**- Eger Xwedê ka çawa ji bo mirovan lezê li başiyê dike wisa jî lezê li xerabî û zerara wan kiribûya, dê teqez civanê mirina wan bianiya (û dê hemû helak kiribûna). Lê belê, ew ên ku hatina ber destê me hêvî nakin em ê wan di xerabiya wan de dermande û sergêjane bihêlin.

**12**- Çi dema tengezariyek bigihîje mirovî, li ser kêleka xwe yan rûniştî yan jî li piyan her hawara xwe digihîne me (da ku em wî ji tengezariyê rizgar bikin). Lê belê çi dema me tengezarî ji ser rakir her wekî ji bo (rakirina) wê tengezariyê qet hawara xwe negihandibe me, li ser gunehan îsrar dike. Ha wisa ji bo tixûbbihêran kar û kiryarên wan hatine xemilandin.

Nankorî û şîrheramî exlaqê mirovê kafir e. Lêbelê mirovê bawermend ne wisa ye, gava nîmetek bigihîje wî, ew ji Xwedayê xwe re spas dike û gava belayek were serê wî, sebrê dikêşe.

**13**- Sond be, xelkê qirnên beriya we, dema (bi şirk û kafiriyê) li xwe zilim kirin Me ew ji navê birin, pêxemberên wan ji wan re mucîze anîn lê dîsa ew nebûn ku bawerî bînin (vêca ew bûn musteheqê helakê). Ha, wisa em civata gunehkar ceza dikin.

**14**- Paşê me, li dûv wan hûn li ser erdê kirin şûngirên wan da ku em binêrin ka hûn ê çawa kar bikin.

وَاِذَا تُتْلٰى عَلَيْهِمْ اٰيَاتُنَا بَيِّنَاتٍ قَالَ الَّذِينَ لَا يَرْجُونَ
لِقَٓاءَنَا ائْتِ بِقُرْاٰنٍ غَيْرِ هٰذَٓا اَوْ بَدِّلْهُ قُلْ مَا يَكُونُ لِٓي
اَنْ اُبَدِّلَهُ مِنْ تِلْقَٓائِ نَفْسِي اِنْ اَتَّبِعُ اِلَّا مَا يُوحٰٓى اِلَيَّ
اِنِّٓي اَخَافُ اِنْ عَصَيْتُ رَبِّي عَذَابَ يَوْمٍ عَظِيمٍ ﴿١٥﴾ قُلْ
لَوْ شَٓاءَ اللّٰهُ مَا تَلَوْتُهُ عَلَيْكُمْ وَلَٓا اَدْرٰيكُمْ بِهٖ فَقَدْ
لَبِثْتُ فِيكُمْ عُمُرًا مِنْ قَبْلِهٖ اَفَلَا تَعْقِلُونَ ﴿١٦﴾ فَمَنْ
اَظْلَمُ مِمَّنِ افْتَرٰى عَلَى اللّٰهِ كَذِبًا اَوْ كَذَّبَ بِاٰيَاتِهٖ اِنَّهُ
لَا يُفْلِحُ الْمُجْرِمُونَ ﴿١٧﴾ وَيَعْبُدُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ مَا لَا
يَضُرُّهُمْ وَلَا يَنْفَعُهُمْ وَيَقُولُونَ هٰٓؤُلَٓاءِ شُفَعَٓاؤُنَا عِنْدَ اللّٰهِ
قُلْ اَتُنَبِّؤُنَ اللّٰهَ بِمَا لَا يَعْلَمُ فِي السَّمٰوَاتِ وَلَا فِي
الْاَرْضِ سُبْحَانَهُ وَتَعَالٰى عَمَّا يُشْرِكُونَ ﴿١٨﴾ وَمَا
كَانَ النَّاسُ اِلَّٓا اُمَّةً وَاحِدَةً فَاخْتَلَفُوا وَلَوْلَا كَلِمَةٌ
سَبَقَتْ مِنْ رَبِّكَ لَقُضِيَ بَيْنَهُمْ فِيمَا فِيهِ يَخْتَلِفُونَ
﴿١٩﴾ وَيَقُولُونَ لَوْلَٓا اُنْزِلَ عَلَيْهِ اٰيَةٌ مِنْ رَبِّهٖ فَقُلْ اِنَّمَا
الْغَيْبُ لِلّٰهِ فَانْتَظِرُوا اِنِّي مَعَكُمْ مِنَ الْمُنْتَظِرِينَ ﴿٢٠﴾

**15-** Dema ayetên me aşkera ji wan re dihatin xwendin, ew ên ku (li axretê) dîtina me hêvî nakin, digotin: Ya Quraneke ji bilî vê bîne yan jî vê biguherîne! (Resûlê min! Ji wan re) Bibêje: Ji min re ne mimkun e ku ez wê ji ber xwe ve biguherînim, ez bes didim pey a ku ji min re tê wehîkirin, bêguman ez ji ezabê rojeke mezin ditirsim eger ku ez bêemriya Xwedayê xwe bikim.

Ev ayeta pîroz wê pêşniyaza muşrikan vedigerîne ya ku cahilane kiribûn. Lewra muşrikan ji pêxemberê me re gotibû: Heke bi rastî tu bixwazî em baweriyê bi te bînin, Qur'aneke din bîne ku tê de hukmek tune be ku ji me bixwaze; em dest ji pûtên xwe berdin. Heke Xwedê Qur'aneke wiha ji te re danexe, tu ji ber xwe ve lêbîne, yan jî hin ayetên vê Qur'anê biguherîne û bersiva daxwazên me bide. Ha vê ayeta pîroz ev pêşniyara wan vegerandiye û tiştek nedaye destê wan.

**16-** (Resûlê min! Ji wan re) Bibêje: Eger Xwedê bixwesta, (dê ev Quran ji min re nehinarta û) min ê ew ji we re nexwenda, Xwedê jî dê ew ji we re nedabûya zanîn. Beriya vê Quranê, min temenek (çil sal) di nav we de bihurand (û min dozeke wiha li we nekir). Ma hê jî hûn tênagihîjin (ku ev Quran ne ji cem min e, lê ji cem Xwedê ye)?

**17-** Ma ji wî kesê ku li ser navê Xwedê derewê lêbîne yan jî bi ayetên wî bawerî neyîne, zalimtir kî heye? Bêguman rewş ev e, gunehkar bi ser nakevin!

**18-** Ew, di şûna Xwedê Teala de yên ku ne dikarin xerabiyê bidin wan û ne jî dikarin feydê bidin wan dihebînin û dibêjin: Ev, li cem Xwedê mehdervanên me ne. (Resûlê min! Ji wan muşrikan re) Bibêje: Erê ma hûn a ku li erd û asîmanan Xwedê pê nizane, vêca hûn wî pê agahdar dikin?! Haşa! Xwedê Teala, pak û bilind e ji wê şirka ku ew dikin.

**19-** Mirov, di destpêkê de (li ser baweriya tewhîdê) her yek milet bûn, paşê ketin îxtilafê û ji hev cuda bûn. Eger ji ber fermana Xwedê nebûye (ku wan pêkve nede ezabê), dê di navbera wan de hukm bihata kirin di ya ku tê de bi hev ketin (vêca Xwedê muhlet da wan da ku rast û nerast ji hev cuda bibin).

**20-** (Xelkê Mekkeyê) Dibêjin: De bila mucîzeyek ji cem Xwedayê Muhemmed, jê re hatibûya (da me jî bawerî pê anîbûya)? (Ji wan re) Bibêje: Xeyb, bes karê Xwedê ye, mucîze bi fermana wî ne. Vêca (ji bo hatina ezab) çavlirê bin, ez jî, digel we ji çaverêyan im.

وَاِذَٓا اَذَقْنَا النَّاسَ رَحْمَةً مِنْ بَعْدِ ضَرَّٓاءَ مَسَّتْهُمْ اِذَا لَهُمْ مَكْرٌ
فٖى اٰيَاتِنَاۜ قُلِ اللّٰهُ اَسْرَعُ مَكْرًاۜ اِنَّ رُسُلَنَا يَكْتُبُونَ مَا تَمْكُرُونَ
٢١ هُوَ الَّذٖى يُسَيِّرُكُمْ فِى الْبَرِّ وَالْبَحْرِۜ حَتّٰٓى اِذَا كُنْتُمْ فِى الْفُلْكِۚ
وَجَرَيْنَ بِهِمْ بِرٖيحٍ طَيِّبَةٍ وَفَرِحُوا بِهَا جَٓاءَتْهَا رٖيحٌ عَاصِفٌ
وَجَٓاءَهُمُ الْمَوْجُ مِنْ كُلِّ مَكَانٍ وَظَنُّٓوا اَنَّهُمْ اُحٖيطَ بِهِمْۙ دَعَوُا
اللّٰهَ مُخْلِصٖينَ لَهُ الدّٖينَۚ لَئِنْ اَنْجَيْتَنَا مِنْ هٰذِهٖ لَنَكُونَنَّ مِنَ
الشَّاكِرٖينَ ٢٢ فَلَمَّٓا اَنْجٰيهُمْ اِذَا هُمْ يَبْغُونَ فِى الْاَرْضِ بِغَيْرِ
الْحَقِّۜ يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ اِنَّمَا بَغْيُكُمْ عَلٰٓى اَنْفُسِكُمْۙ مَتَاعَ الْحَيٰوةِ
الدُّنْيَا ثُمَّ اِلَيْنَا مَرْجِعُكُمْ فَنُنَبِّئُكُمْ بِمَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ٢٣
اِنَّمَا مَثَلُ الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا كَمَٓاءٍ اَنْزَلْنَاهُ مِنَ السَّمَٓاءِ فَاخْتَلَطَ بِهٖ
نَبَاتُ الْاَرْضِ مِمَّا يَأْكُلُ النَّاسُ وَالْاَنْعَامُۜ حَتّٰٓى اِذَٓا اَخَذَتِ الْاَرْضُ
زُخْرُفَهَا وَازَّيَّنَتْ وَظَنَّ اَهْلُهَٓا اَنَّهُمْ قَادِرُونَ عَلَيْهَٓاۙ اَتٰيهَٓا
اَمْرُنَا لَيْلًا اَوْ نَهَارًا فَجَعَلْنَاهَا حَصٖيدًا كَاَنْ لَمْ تَغْنَ بِالْاَمْسِۜ
كَذٰلِكَ نُفَصِّلُ الْاٰيَاتِ لِقَوْمٍ يَتَفَكَّرُونَ ٢٤ وَاللّٰهُ يَدْعُٓوا اِلٰى
دَارِ السَّلَامِۜ وَيَهْدٖى مَنْ يَشَٓاءُ اِلٰى صِرَاطٍ مُسْتَقٖيمٍ ٢٥

لِلَّذٖينَ

**21**- Çi dema li pey tengasiyeke ku ew hingaft bûn, me berfirehiyek da ser wan, tu dibînî ku der barê ayetên me de fend û fetl çêkirin. (Ji wan re) Bibêje: Xwedê di cezadana xwe de bileztir e (vêca guman nekin ku bersiva we dê neyê dayîn). Bêguman melayîketên me hemû fend û fetlên we dinivîsin.

Ev ayeta pîroz di bara xelkên xwedênenas ên Mekkê de daketiye. Li gorî rîwayetan, tam heft salan baran li Mekkê nebariye. Ji ber ziwahiyê xela çêbûye, gelek mirov û heywan ji nêza mirine. Paşê, Xwedê baraneke pir barandiye, ji nû ve welat hêşîn û xweş bûye. Lêbelê xelkê ev baran û rehmet ne ji Xwedê, ji stêr û pûtan zanîne û ayetên Xwedê dîsa mandel kirine.

**22**- Ew Xwedayê ku di bej û deryayê de we digerîne (hêz û derfet daye we, vêca bi navgîna wan hûn di bej û deryayê de diçin û tên), heta dema hûn di keştiyê de bin, bayekî nerm û xweş keştiyê bikişîne (û rêwî jî) bi vê kêfxweş bibin; vêca ji nişka ve bayekî dijwar bê li keştiyê bide û ji her alî ve pêl bêne ser wan û fehm bikin ku dor li wan hate girtin; êdî ji dil gazî Xwedê Teala dikin: Sond be, eger tu me ji vê tengasiyê xelas bikî, teqez em ê bibin ji spasdaran!

**23**- Çi dema Xweda ew rizgar kirin, (tu dibînî ku dîsa) ew, bêyî ku heqê wan hebe li ser erdê sitemkarî dikin! Gelî mirovan! Zilma we, tenê li we ye û (bi vê) bes hûn pertalên jiyana dinyayê bi dest dixin, paşê, dîsa vegera we bi bal me ve ye. Vêca em ê bi kar û kiryarên ku we (li dinyayê) dikirin, we agahdar bikin.

**24**- Bêguman rewşa jiyana dinyayê bes weke baranekê ye ku me ji esmên barandiye. Vêca bi wê avê giyayên ser erdê (rengereng) ji yên ku mirov û heywan ji wan dixwin têkilî nav hev bûn. Heta dema ku erd xişrê xwe digire (û reng bi reng) dixemile. Xwediyên wê jî hizir dikin ku ew dikarin berên xwe biçinin û sûdê jê wergirin. (Hingê) fermana me bi şev yan jî bi roj bi ser de hat, vêca me wekî zeviya dirûtî (çinandî) lêkir, her wekî ku duh ew şînkatî tune bû. Ha bi vî rengî ji bo yên ku difikirin em ayetên xwe bi berfirehî tînin.

**25**- Xwedê Teala, (bendeyên xwe) gazî mala selametiyê (bihiştê) dike û ew kê bivê berê wî dide riya rast.

لِلَّذِينَ اَحْسَنُوا الْحُسْنٰى وَزِيَادَةٌ وَلَا يَرْهَقُ وُجُوهَهُمْ قَتَرٌ
وَلَا ذِلَّةٌ اُولٰٓئِكَ اَصْحَابُ الْجَنَّةِ هُمْ فِيهَا خَالِدُونَ ﴿٢٦﴾ وَالَّذِينَ
كَسَبُوا السَّيِّـَٔاتِ جَزَٓاءُ سَيِّئَةٍ بِمِثْلِهَا وَتَرْهَقُهُمْ ذِلَّةٌ مَا لَهُمْ مِنَ
اللّٰهِ مِنْ عَاصِمٍ كَاَنَّمَٓا اُغْشِيَتْ وُجُوهُهُمْ قِطَعًا مِنَ الَّيْلِ مُظْلِمًا
اُولٰٓئِكَ اَصْحَابُ النَّارِ هُمْ فِيهَا خَالِدُونَ ﴿٢٧﴾ وَيَوْمَ نَحْشُرُهُمْ
جَمِيعًا ثُمَّ نَقُولُ لِلَّذِينَ اَشْرَكُوا مَكَانَكُمْ اَنْتُمْ وَشُرَكَٓاؤُكُمْ
فَزَيَّلْنَا بَيْنَهُمْ وَقَالَ شُرَكَٓاؤُهُمْ مَا كُنْتُمْ اِيَّانَا تَعْبُدُونَ ﴿٢٨﴾
فَكَفٰى بِاللّٰهِ شَهِيدًا بَيْنَنَا وَبَيْنَكُمْ اِنْ كُنَّا عَنْ عِبَادَتِكُمْ لَغَافِلِينَ
﴿٢٩﴾ هُنَالِكَ تَبْلُوا كُلُّ نَفْسٍ مَٓا اَسْلَفَتْ وَرُدُّٓوا اِلَى اللّٰهِ مَوْلٰيهُمُ
الْحَقِّ وَضَلَّ عَنْهُمْ مَا كَانُوا يَفْتَرُونَ ﴿٣٠﴾ قُلْ مَنْ يَرْزُقُكُمْ
مِنَ السَّمَٓاءِ وَالْاَرْضِ اَمَّنْ يَمْلِكُ السَّمْعَ وَالْاَبْصَارَ وَمَنْ يُخْرِجُ
الْحَيَّ مِنَ الْمَيِّتِ وَيُخْرِجُ الْمَيِّتَ مِنَ الْحَيِّ وَمَنْ يُدَبِّرُ الْاَمْرَ
فَسَيَقُولُونَ اللّٰهُ فَقُلْ اَفَلَا تَتَّقُونَ ﴿٣١﴾ فَذٰلِكُمُ اللّٰهُ رَبُّكُمُ الْحَقُّ
فَمَاذَا بَعْدَ الْحَقِّ اِلَّا الضَّلَالُ فَاَنّٰى تُصْرَفُونَ ﴿٣٢﴾ كَذٰلِكَ
حَقَّتْ كَلِمَتُ رَبِّكَ عَلَى الَّذِينَ فَسَقُوا اَنَّهُمْ لَا يُؤْمِنُونَ ﴿٣٣﴾

**26-** Ji bo wan ên ku karên qenc kirin xelata herî rind û ji wê hê zêdetir jî (di bihiştê de dîtina Xwedê) heye. Ser û çavên wan ne bi toz dibin ne jî perîşanî digire ser. Ha ew bihiştî ne, her û her ew tê de dimînin.

**27-** Ew ên ku karên xerab kirin, cezayê wan bi qasî gunehên wan e. Rûreşî û riswayî wan digire û ji bo wan tu parêzkar nîn in ku wan ji (ezabê) Xwedê biparêzin. Ser û çavên wan, her wekî parçeyek ji şeva reştarî ew girtibin. Ha ew dojehî ne, ew her û her tê de dimînin.

Xelata qenciyekê, deh qat e, hefsed qat e û hê jî pirtir e. Ev yek ji ciwanmêriya Xwedê ye. Cezayê neqenciyekê jî yek qat e, ev jî ji encama dadmendiya Xwedê ye.

**28-** Roja em hemûyan li hev kom dikin, paşê em ê bibêjin ji wan ên ku ji bo Xwedê hevpişk çêkirin; hûn û ew ên ku we ji Xwedê re kirine hevpişk li cihê xwe rawestin (heyanî ku der barê we de biryar bê dayîn). Êdî me ew ji hev qetandin. Perestiyên wan ji wan re gotin: We em nehebandine.

**29-** Vêca ev bes e ku Xwedê di navbera me û we de şahid be, ku em ji perestina we bêxeber bûn.

**30-** Ha wê rojê, her kes dê kar û kiryarên xwe bibîne, hemû dê bi bal Ellah Teala Xwedayê wan yê heq ve bên vegerandin û ew derewa ku wan lê dianî dê ji ber wan winda û berze bibe.

**31-** (Resûlê min! Ji muşrikan re) Bibêje: Ma ji erd û asîmanan kî rizqê we dide? Yan ma kî dikare guh û çavan biafirîne (û ji belayan biparêze)? Kî dikare yê sax, ji yê mirî û yê mirî ji yê sax derêxe? Kî karên afirandinê bi rê ve dibe? Vêca ew dê bibêjin: Ellah Teala ye. Nexwe (ji wan re) bibêje: Eger wisa ye, êdî çima hûn xwe (ji ezabê) Xwedê naparêzin (û baweriyê pê nayînin)?

**32-** (Ev ê ku van hemûyan dike) Ellah Teala ye, ew Xwedayê we yî rast û heq e. Êdî ma piştî heqiyê ji rêşaşiyê pê ve çi heye?! Vêca çawa hûn berê xwe ji îmanê vedigerînin?

**33-** Ha bi vî awayî fermana Xwedayê te (bi ezabê) li ser jirêderketiyan pêwîst bû, lewra ew baweriyê nayînin.

قُلْ هَلْ مِنْ شُرَكَٓائِكُمْ مَنْ يَبْدَؤُا الْخَلْقَ ثُمَّ يُع۪يدُهُ قُلِ اللّٰهُ يَبْدَؤُا الْخَلْقَ
ثُمَّ يُع۪يدُهُ فَاَنّٰى تُؤْفَكُونَ ﴿٣٤﴾ قُلْ هَلْ مِنْ شُرَكَٓائِكُمْ مَنْ يَهْد۪ٓي
اِلَى الْحَقِّ قُلِ اللّٰهُ يَهْد۪ي لِلْحَقِّ اَفَمَنْ يَهْد۪ٓي اِلَى الْحَقِّ اَحَقُّ اَنْ
يُتَّبَعَ اَمَّنْ لَا يَهِدّ۪ٓي اِلَّٓا اَنْ يُهْدٰى فَمَا لَكُمْ كَيْفَ تَحْكُمُونَ ﴿٣٥﴾
وَمَا يَتَّبِعُ اَكْثَرُهُمْ اِلَّا ظَنًّا اِنَّ الظَّنَّ لَا يُغْن۪ي مِنَ الْحَقِّ شَيْـًٔا
اِنَّ اللّٰهَ عَل۪يمٌ بِمَا يَفْعَلُونَ ﴿٣٦﴾ وَمَا كَانَ هٰذَا الْقُرْاٰنُ اَنْ يُفْتَرٰى
مِنْ دُونِ اللّٰهِ وَلٰكِنْ تَصْد۪يقَ الَّذ۪ي بَيْنَ يَدَيْهِ وَتَفْص۪يلَ الْكِتَابِ
لَا رَيْبَ ف۪يهِ مِنْ رَبِّ الْعَالَم۪ينَ ﴿٣٧﴾ اَمْ يَقُولُونَ افْتَرٰيهُ قُلْ فَاْتُوا
بِسُورَةٍ مِثْلِه۪ وَادْعُوا مَنِ اسْتَطَعْتُمْ مِنْ دُونِ اللّٰهِ اِنْ كُنْتُمْ صَادِق۪ينَ
﴿٣٨﴾ بَلْ كَذَّبُوا بِمَا لَمْ يُح۪يطُوا بِعِلْمِه۪ وَلَمَّا يَأْتِهِمْ تَأْو۪يلُهُ
كَذٰلِكَ كَذَّبَ الَّذ۪ينَ مِنْ قَبْلِهِمْ فَانْظُرْ كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ الظَّالِم۪ينَ
﴿٣٩﴾ وَمِنْهُمْ مَنْ يُؤْمِنُ بِه۪ وَمِنْهُمْ مَنْ لَا يُؤْمِنُ بِه۪ وَرَبُّكَ اَعْلَمُ
بِالْمُفْسِد۪ينَ ﴿٤٠﴾ وَاِنْ كَذَّبُوكَ فَقُلْ ل۪ي عَمَل۪ي وَلَكُمْ عَمَلُكُمْ
اَنْتُمْ بَر۪ٓيؤُ۫نَ مِمَّٓا اَعْمَلُ وَاَنَا بَر۪ٓيءٌ مِمَّا تَعْمَلُونَ ﴿٤١﴾ وَمِنْهُمْ مَنْ
يَسْتَمِعُونَ اِلَيْكَ اَفَاَنْتَ تُسْمِعُ الصُّمَّ وَلَوْ كَانُوا لَا يَعْقِلُونَ ﴿٤٢﴾

وَمِنْهُمْ

**34**- Bibêje: Ma ji wan ên ku hûn ji bo Xwedê dikin hevpişk yek heye ku dest bi afirandinê bike, paşê (piştî mirinê) dîsa wî vegerîne (rewşa wî ya berê)? Bibêje: Xwedê Teala ji tunehiyê (her kesî û her tiştî) diafirîne, piştî ku (dimirîne dîsa vedijîne) û vedigerîne (ser rewşa wî ya berê). Nexwe (digel heyîna delîlan) hûn çawa berê xwe (ji baweriyê) vedigerînin?!

**35**- Bibêje: Ma ji wan ên ku hûn ji bo Xwedê dikin hevpişk yek heye ku rasterêkirinê ji bo heq û rastiyê bike? Bibêje: Xwedê Teala, rasterêkirinê ji bo heqiyê dike. Vêca ma qey yê ku rasterêkirinê ji bo heqiyê bike layîq e ku mirov bide pey wî, yan ew ê ku heyanî ew neyê rasterêkirin ew nikare xwe rasterê bike layîq e?! Vêca we xêr e, çawa hûn bi vî awayî biryar didin (ku hûn wan û Xwedê tînin rêzekê)?!

**36**- Pirên wan ji gumanê pê ve nadin pey tiştekî din, bi rastî guman mirov ji heqiyê bêminet nake (guman tu carî cihê heqiyê nagire). Bêguman Xwedê, bi ya ku ew dikin baş dizane.

**37**- Ev Quran, ji bilî Xwedê Teala teqez kesekî din çênekiriye û negotiye. Lê belê ew, rastderêxa kitêbên beriya xwe ye û bi berfirehî ronîkirina hukmên Xwedê ye. Di wê de tu guman tune ye ku ew ji cem Xwedayê alemê ye.

**38**- Yan jî ma ew dibêjin: Muhemmed Quran lêaniye? Bibêje: Eger bi rastî hûn (di doza xwe de) rastbêj in, de heydê hûn jî sûretekî wekî wê bînin holê û ji bilî Xwedê yên ku hûn karibin gazî wan jî bikin (da ku ji bo we bibin piştek û arîkar).

**39**- Naxêr, belkî wan bawerî bi Quranê neanî ji ber ku zanîna wan tênegihîştiye û hê jî şîroveya wê ji wan re nehatiye. Yên beriya wan jî, wekî wan (bi pêxemberên xwe) bawerî neanîbûn. De binêre ka encama zaliman çawa bûye!

**40**- Hin ji wan hene ku bawerî bi Quranê tînin û hin ji wan hene ku bawerî pê nayînin. Xwedayê te, bêhtir bi xerabkaran dizane.

**41**- Eger wan bawerî bi te neanî, bibêje: Karê min ji min re ye, karê we jî ji we re ye. Hûn ji ya ku ez dikim bêrî ne, ez jî ji ya ku hûn.

**42**- (Resûlê min!) Hin ji wan guhên xwe didine te (dema tu Quranê dixwînî). Erê digel ku ew tênegihîjin jî, ma tu yê bi keran bidî bihîstin?

43- Hin ji wan hene ku berê xwe didine te (delîlên pêxemberiya te dibînin). Erê digel ku ew nabînin jî, ma tu yê koran rasterê bikî?

44- Bêguman Xwedê tu neheqiyê li mirovan nake, lê belê ew bi xwe neheqiyê li xwe dikin.

45- Roja Xwedê wan li hev kom dike, her wekî ew ji saeteke rojê pê ve li dinyayê nemabin hev nas dikin. Bêguman ew ên ku bi dîtina Xwedê (roja qiyametê) bawerî neanîn û rasterê nebûne, xesirîne.

46- (Resûlê min!) Em ji wî (ezabê) ku me ji wan re hazir kirîye, çi hinekî jê (hêj tu li dinyayê) nîşanî te bidin û çi em te bimirînin (tu nebînî), her vegera wan bi bal me ve ye û Xwedê li ser ya ku ew dikin, çavdêr e.

47- Ji her umetekê re pêxemberekî wê heye (da ku wan rasterê bike). Vêca dema pêxemberê wan (roja qiyametê) ji bo wan hat, di navbera wan de bi dadmendî hukm tê kirin û neheqî li wan nayê kirin.

48- Ew (bi tinaz) dibêjin: Eger bi rastî hûn rastgo ne, ew peyman (a bi ezab a ku tu me pê ditirsînî) kengê ye?

49- Bibêje: Ji ya ku Xwedê Teala bivê pê ve ez nikarim zerarekê ji ser xwe biavêjim û ez nikarim feydeyekê jî bidim xwe (vêca çawa ez ê bi lez ji cem xwe ezab ji we re bînim!) Ji her umetekê re civanekî wê heye ku jê re hatiye diyarkirin. Dema civanê wan bê, ew nikarin wê saetekê bidin paş û beriya civanê wan bê jî ew nikarin bidin pêş.

50- Bibêje: (Gelî muşrikan!) De ka ji min re bibêjin, eger ezabê Xwedê Teala



وَمِنْهُمْ مَنْ يَنْظُرُ اِلَيْكَۜ اَفَاَنْتَ تَهْدِي الْعُمْيَ وَلَوْ كَانُوا لَا يُبْصِرُونَ
﴿٤٣﴾ اِنَّ اللّٰهَ لَا يَظْلِمُ النَّاسَ شَيْـًٔا وَلٰكِنَّ النَّاسَ اَنْفُسَهُمْ يَظْلِمُونَ
﴿٤٤﴾ وَيَوْمَ يَحْشُرُهُمْ كَاَنْ لَمْ يَلْبَثُوا اِلَّا سَاعَةً مِنَ النَّهَارِ
يَتَعَارَفُونَ بَيْنَهُمْۜ قَدْ خَسِرَ الَّذِينَ كَذَّبُوا بِلِقَاءِ اللّٰهِ وَمَا كَانُوا
مُهْتَدِينَ ﴿٤٥﴾ وَاِمَّا نُرِيَنَّكَ بَعْضَ الَّذِي نَعِدُهُمْ اَوْ نَتَوَفَّيَنَّكَ
فَاِلَيْنَا مَرْجِعُهُمْ ثُمَّ اللّٰهُ شَهِيدٌ عَلٰى مَا يَفْعَلُونَ ﴿٤٦﴾ وَلِكُلِّ اُمَّةٍ
رَسُولٌۚ فَاِذَا جَاءَ رَسُولُهُمْ قُضِيَ بَيْنَهُمْ بِالْقِسْطِ وَهُمْ لَا يُظْلَمُونَ
﴿٤٧﴾ وَيَقُولُونَ مَتٰى هٰذَا الْوَعْدُ اِنْ كُنْتُمْ صَادِقِينَ ﴿٤٨﴾ قُلْ لَا اَمْلِكُ
لِنَفْسِي ضَرًّا وَلَا نَفْعًا اِلَّا مَا شَاءَ اللّٰهُۜ لِكُلِّ اُمَّةٍ اَجَلٌۜ اِذَا
جَاءَ اَجَلُهُمْ فَلَا يَسْتَاْخِرُونَ سَاعَةً وَلَا يَسْتَقْدِمُونَ ﴿٤٩﴾ قُلْ
اَرَاَيْتُمْ اِنْ اَتٰيكُمْ عَذَابُهُ بَيَاتًا اَوْ نَهَارًا مَاذَا يَسْتَعْجِلُ مِنْهُ
الْمُجْرِمُونَ ﴿٥٠﴾ اَثُمَّ اِذَا مَا وَقَعَ اٰمَنْتُمْ بِهِۜ اٰلْـٰٔنَ وَقَدْ كُنْتُمْ
بِهِ تَسْتَعْجِلُونَ ﴿٥١﴾ ثُمَّ قِيلَ لِلَّذِينَ ظَلَمُوا ذُوقُوا عَذَابَ الْخُلْدِۚ
هَلْ تُجْزَوْنَ اِلَّا بِمَا كُنْتُمْ تَكْسِبُونَ ﴿٥٢﴾ وَيَسْتَنْبِـُٔونَكَ اَحَقٌّ
هُوَۜ قُلْ اِي وَرَبِّي اِنَّهُ لَحَقٌّ وَمَا اَنْتُمْ بِمُعْجِزِينَ ﴿٥٣﴾

bi şev yan jî bi roj bi ser we de bê (hûn ê çi bikin?) Erê ma gunehkar li hatina çi lezê dikin?

51- (Gelî muşrikan!) Ma piştî ku ezab bê rastê hûn ê îmanê bînin? (Hal ev e ku wê çaxê feydeya îmana we ji we re nîn e û hingê dê ji we re wiha bê gotin:) Erê ma vêga we bawerî anî? Hal ev e ku we bi lez ev ezab dixwest.

52- Piştre ji bo wan ên ku neheqî li xwe kirin dê bê gotin: De ezabê ebedî tehm bikin! Ji bilî ya hûn dikin pê ve hûn nayêne cezakirin.

53- Ew ji te dipirsin û dibêjin: Ma ew (ezabê ku tu pê gefan li me dikî) rast e? Bibêje: Erê, ez bi Xwedayê xwe sond dixwim ku teqez ew rast e û hûn ê Xwedê neçar jî nekin.

وَلَوْ اَنَّ لِكُلِّ نَفْسٍ ظَلَمَتْ مَا فِى الْاَرْضِ لَافْتَدَتْ بِهٖۜ وَاَسَرُّوا
النَّدَامَةَ لَمَّا رَاَوُا الْعَذَابَۚ وَقُضِىَ بَيْنَهُمْ بِالْقِسْطِ وَهُمْ لَا
يُظْلَمُونَ ﴿٥٤﴾ اَلَٓا اِنَّ لِلّٰهِ مَا فِى السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ اَلَٓا اِنَّ وَعْدَ
اللّٰهِ حَقٌّ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَهُمْ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٥٥﴾ هُوَ يُحْـيٖ وَيُمٖيتُ
وَاِلَيْهِ تُرْجَعُونَ ﴿٥٦﴾ يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ قَدْ جَٓاءَتْكُمْ مَوْعِظَةٌ
مِنْ رَبِّكُمْ وَشِفَٓاءٌ لِمَا فِى الصُّدُورِۙ وَهُدًى وَرَحْمَةٌ
لِلْمُؤْمِنٖينَ ﴿٥٧﴾ قُلْ بِفَضْلِ اللّٰهِ وَبِرَحْمَتِهٖ فَبِذٰلِكَ فَلْيَفْرَحُواۜ هُوَ خَيْرٌ
مِمَّا يَجْمَعُونَ ﴿٥٨﴾ قُلْ اَرَاَيْتُمْ مَٓا اَنْزَلَ اللّٰهُ لَكُمْ مِنْ رِزْقٍ
فَجَعَلْتُمْ مِنْهُ حَرَامًا وَحَلَالًاۜ قُلْ آٰللّٰهُ اَذِنَ لَكُمْ اَمْ عَلَى اللّٰهِ
تَفْتَرُونَ ﴿٥٩﴾ وَمَا ظَنُّ الَّذٖينَ يَفْتَرُونَ عَلَى اللّٰهِ الْكَذِبَ يَوْمَ
الْقِيٰمَةِۜ اِنَّ اللّٰهَ لَذُو فَضْلٍ عَلَى النَّاسِ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَهُمْ لَا
يَشْكُرُونَ ﴿٦٠﴾ وَمَا تَكُونُ فٖى شَاْنٍ وَمَا تَتْلُوا مِنْهُ مِنْ قُرْاٰنٍ
وَلَا تَعْمَلُونَ مِنْ عَمَلٍ اِلَّا كُنَّا عَلَيْكُمْ شُهُودًا اِذْ تُفٖيضُونَ
فٖيهِۜ وَمَا يَعْزُبُ عَنْ رَبِّكَ مِنْ مِثْقَالِ ذَرَّةٍ فِى الْاَرْضِ وَلَا فِى
السَّمَٓاءِ وَلَٓا اَصْغَرَ مِنْ ذٰلِكَ وَلَٓا اَكْبَرَ اِلَّا فٖى كِتَابٍ مُبٖينٍ ﴿٦١﴾

اَلَٓا

**54**- Eger ji bo her kesê ku li xwe zilim kirî tiştê li erdê heye tev yê wî be, teqez dê di ber xwe de bide (da ku ji ezab xilas bibe). Dema ew ezab dibînin poşmaniya xwe vedişêrin. Di nav wan de bi dadî tê hukimkirin û neheqî li wan nayê kirin.

**55**- Agahdar bin, bêguman li erd û asîmanan çi hebe ew ê Xwedê ye. Hişyar bin, bêguman peymana Xweda (ya ji nû ve saxkirin û cezakirinê) heq e. Lê belê pirên wan vê nizanin.

**56**- Xwedê Teala ye yê ku sax dike û yê ku dimirîne û hûn ê lê bêne vegerandin.

**57**- Gelî mirovan! Ji cem Xwedayê we, ji bo we şîretek, ji (derdên) dilan re şîfayek û ji bo bawermendan jî rêberek û rehmetek hatiye.

Ev ayeta pîroz çar taybetmendiyên Qur'ana Mecîd rave dike. Qur'an, hemû bêhnpakî û riswayiyan ji mirovan re eşkere dike, we'zeke rind û bitîn e ku berê mirovan dide exlaqên rind. Şîfayeke wisa ye ku dilê wan ji nexweşiya kufr û nîfaqê derman dike. Rêbereke wisa ye ku berê xelkê dide rêya dilşadî û aramiyê û rehmeteke wilo ye ku xelkê ji tarîtî û teqana kufrê dertîne bextewariya seraqetî.

**58**- Bibêje: Bes, (dînê heq û hîdayet) bi kerem û dilovaniya Xweda ye, vêca bila bi vê kêfxweş û dilşad bibin. Ev ji malê ku ew dicivînin, çêtirtir e.

**59**- Bibêje: (Gelî muşrikan!) De ka ji min re bibêjin, ji wî rizqê ku Xwedê Teala ji bo we afirandî hûn hinekî heram û hinekî jî helal didêrin? (Resûlê min! Ji wan re) Bibêje: Ma di vê (heram û helalkirinê) de Xwedê Teala destûr daye we? Yan jî ma hûn li Xwedê bêbextiyê dikin?

**60**- Ma ew ên ku li hemberî Xwedê derewê lêtînin, gumana wan di heqê roja qiyametê de çi ye (qey ji wan we ye ku dê li wan bibore)? Bêguman Xwedê Teala di biwara mirovan de xwedî kerem e, belê pirên wan spasiya (vî nîmetî) nakin.

**61**- (Resûlê min!) Tu di çi karî de bibî, tu çi ji Quranê bixwînî û hûn çi karî bikin, dema hûn xwe noqî wî karî bikin her em li ser we çavdêr in. Ne li erdê ne jî li asîmên bi qasî giraniya zereyekê tiştek ji ber Xwedayê te winda nabe. Ji vê hê biçûktir û mezintir jî çi hebe, her ew di nivîseke aşkera (di Lewh'ul-Mehfûzê) de tomarkirî ye.

أَلَا إِنَّ أَوْلِيَاءَ اللَّهِ لَا خَوْفٌ عَلَيْهِمْ وَلَا هُمْ يَحْزَنُونَ ﴿٦٢﴾
الَّذِينَ آمَنُوا وَكَانُوا يَتَّقُونَ ﴿٦٣﴾ لَهُمُ الْبُشْرَى فِي
الْحَيَاةِ الدُّنْيَا وَفِي الْآخِرَةِ لَا تَبْدِيلَ لِكَلِمَاتِ اللَّهِ
ذَلِكَ هُوَ الْفَوْزُ الْعَظِيمُ ﴿٦٤﴾ وَلَا يَحْزُنْكَ قَوْلُهُمْ إِنَّ الْعِزَّةَ
لِلَّهِ جَمِيعًا هُوَ السَّمِيعُ الْعَلِيمُ ﴿٦٥﴾ أَلَا إِنَّ لِلَّهِ مَنْ
فِي السَّمَاوَاتِ وَمَنْ فِي الْأَرْضِ وَمَا يَتَّبِعُ الَّذِينَ
يَدْعُونَ مِنْ دُونِ اللَّهِ شُرَكَاءَ إِنْ يَتَّبِعُونَ إِلَّا الظَّنَّ
وَإِنْ هُمْ إِلَّا يَخْرُصُونَ ﴿٦٦﴾ هُوَ الَّذِي جَعَلَ لَكُمُ اللَّيْلَ
لِتَسْكُنُوا فِيهِ وَالنَّهَارَ مُبْصِرًا إِنَّ فِي ذَلِكَ لَآيَاتٍ لِقَوْمٍ
يَسْمَعُونَ ﴿٦٧﴾ قَالُوا اتَّخَذَ اللَّهُ وَلَدًا سُبْحَانَهُ هُوَ الْغَنِيُّ
لَهُ مَا فِي السَّمَاوَاتِ وَمَا فِي الْأَرْضِ إِنْ عِنْدَكُمْ
مِنْ سُلْطَانٍ بِهَذَا أَتَقُولُونَ عَلَى اللَّهِ مَا لَا تَعْلَمُونَ
﴿٦٨﴾ قُلْ إِنَّ الَّذِينَ يَفْتَرُونَ عَلَى اللَّهِ الْكَذِبَ لَا يُفْلِحُونَ
﴿٦٩﴾ مَتَاعٌ فِي الدُّنْيَا ثُمَّ إِلَيْنَا مَرْجِعُهُمْ ثُمَّ نُذِيقُهُمُ
الْعَذَابَ الشَّدِيدَ بِمَا كَانُوا يَكْفُرُونَ ﴿٧٠﴾

62- Agahdar bin, bêguman weliyên Xwedê, ne tirs ji bo wan heye ne jî ew xemgîn dibin.

63- Ew weliyên ku (bi rengê pêdivî) bawerî anîn û (bi pêkanîna hukm û biryarên Xwedê) xwe diparêzin.

64- Di jiyana dinyayê de û di jiyana axîretê de ji bo wan mizgînî heye. Di gotinên Xwedê de qet guhartin nîn e (ew çi sozê bide her wê tîne cih). Ha ev, serfiraziya mezin bi xwe ye.

Ew mizgîna jiyana cîhanê ya ku ayetê bahsa wê kir, ew mizgîn e ku melaîket li ber mirinê didin. Mizgîna li axîretê jî, ew mizgîn e ku di bara bextewariyê de melaîket ji wan re dibêjin.

65- Bila gotina wan (ya ku dibêjin Tu ne pêxember î) te xemgîn neke! Bêguman îzet (desthilatî û serkeftin) hemû ya Xwedê ye. Her Ew e, yê Bihîzer, yê Zana.

66- Agahdar bin, li erd û asîmanan çi hebe her ew ên Xwedê ne. (Nexwe) ew ên ku ji bilî Xwedê hevpişkan dihebînin, ew didin pey çi? (Bi rastî) ew ji gumaneke pûç pê ve li pey tiştekî din naçin û ew her derewan dikin.

67- (Gelî mirovan!) Ellah Teala ye, yê ku ji bo we şev afirandiye da ku hûn tê de bêhna xwe berdin û roj kiriye ronahî (da ku hûn tê de bixebitin). Bêguman di van de ji bo civateke ku guhdarî bikin, nîşan hene (ku yekîtî û qudreta Xwedê Teala didin xuyakirin).

68- (Muşrikan) Gotin: Zarokên Xwedê Teala hene. Haşa! Ew ji vê pak û dûr e. Ew dewlemend e. Her jê re ye ya li erd û asîmanan. Di vê mijarê de li cem we tu pêbawerî (delîl) tune ye. Erê ma ya ku hûn nizanin der barê Xwedê Teala de hûn dibêjin?

69- Bibêje: Bêguman ew ên ku li hemberî Xwedê Teala derewan lêtînin hîç bi ser nakevin.

70- (Ji bo wan) li dinyayê pertalekî hindik heye. (Lê belê) piştre vegera wan bi bal me ve ye. Paşê, ji ber bêbawerî û kafirbûna wan em ê ezabê herî dijwar bi wan bidin çêştin.

وَاتْلُ عَلَيْهِمْ نَبَاَ نُوحٍ اِذْ قَالَ لِقَوْمِهٖ يَا قَوْمِ اِنْ كَانَ كَبُرَ
عَلَيْكُمْ مَقَامٖى وَتَذْكٖيرٖى بِاٰيَاتِ اللّٰهِ فَعَلَى اللّٰهِ تَوَكَّلْتُ فَاَجْمِعُوا
اَمْرَكُمْ وَشُرَكَٓاءَكُمْ ثُمَّ لَا يَكُنْ اَمْرُكُمْ عَلَيْكُمْ غُمَّةً ثُمَّ اقْضُٓوا
اِلَيَّ وَلَا تُنْظِرُونِ ﴿٧١﴾ فَاِنْ تَوَلَّيْتُمْ فَمَا سَاَلْتُكُمْ مِنْ اَجْرٍ اِنْ
اَجْرِيَ اِلَّا عَلَى اللّٰهِ وَاُمِرْتُ اَنْ اَكُونَ مِنَ الْمُسْلِمٖينَ ﴿٧٢﴾ فَكَذَّبُوهُ
فَنَجَّيْنَاهُ وَمَنْ مَعَهُ فِى الْفُلْكِ وَجَعَلْنَاهُمْ خَلَٓائِفَ وَاَغْرَقْنَا
الَّذٖينَ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا فَانْظُرْ كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ الْمُنْذَرٖينَ ﴿٧٣﴾
ثُمَّ بَعَثْنَا مِنْ بَعْدِهٖ رُسُلًا اِلٰى قَوْمِهِمْ فَجَٓاؤُهُمْ بِالْبَيِّنَاتِ فَمَا
كَانُوا لِيُؤْمِنُوا بِمَا كَذَّبُوا بِهٖ مِنْ قَبْلُ كَذٰلِكَ نَطْبَعُ عَلٰى قُلُوبِ
الْمُعْتَدٖينَ ﴿٧٤﴾ ثُمَّ بَعَثْنَا مِنْ بَعْدِهِمْ مُوسٰى وَهٰرُونَ اِلٰى فِرْعَوْنَ
وَمَلَا۬ئِهٖ بِاٰيَاتِنَا فَاسْتَكْبَرُوا وَكَانُوا قَوْمًا مُجْرِمٖينَ ﴿٧٥﴾ فَلَمَّا
جَٓاءَهُمُ الْحَقُّ مِنْ عِنْدِنَا قَالُٓوا اِنَّ هٰذَا لَسِحْرٌ مُبٖينٌ ﴿٧٦﴾ قَالَ مُوسٰٓى
اَتَقُولُونَ لِلْحَقِّ لَمَّا جَٓاءَكُمْ اَسِحْرٌ هٰذَا وَلَا يُفْلِحُ السَّاحِرُونَ
﴿٧٧﴾ قَالُٓوا اَجِئْتَنَا لِتَلْفِتَنَا عَمَّا وَجَدْنَا عَلَيْهِ اٰبَٓاءَنَا وَتَكُونَ
لَكُمَا الْكِبْرِيَٓاءُ فِى الْاَرْضِ وَمَا نَحْنُ لَكُمَا بِمُؤْمِنٖينَ ﴿٧٨﴾

حزب

وَقَالَ

**71-** Ji bo wan peyama Nûh bixwîne ku wî ji gelê xwe re gotibû: Ey gelê min! Eger mayîna min di nav we de û şîreta min a bi ayetên Xwedê bi we giran be, vêca bes min xwe sparte Xwedê. Hûn û digel hevpişkên xwe biciviin û biryara karê xwe bidin, paşê bila karê we ji bo we nebe derd û kovan. Piştre hukmê xwe der barê min de bidin û keysê (muhletê) jî nedin min.

**72-** Eger hûn berê xwe (ji şîretê min) dagerînin, vêca ma ne min tu heqdestek ji we nexwestiye. Bes heqê min ji cem Xweda ye û ferman li min hatiye kirin ku ez ji mislimanan bim.

**73-** Dîsa jî wan bi Nûh Peyxember bawerî neanî. Me jî hem Nûh hem jî ew ên ku di keştiyê de pê re bûn xilas kirin û me (li ser erdê) ew kirin şûngir. Me ew ên ku bi ayetên me bawerî neanîn jî (di tofanê de) binav kirin. De binêre ka encama wan ên hatine hişyarkirin (û bawerî neanî) çawa bû!

**74-** Piştre, li pey wî, me gelek pêxember ji gelên wan re şandin û pêxemberan ji bo wan mucîze anîn. Lê belê (ji ber tebîetê kufra ku di wan de heye) ew nebûn ku baweriyê bînin, bi ya ku wan berê bawerî pê neanîbû. Ha bi vî awayî em, morê li dilên tixûbbihêran dixin.

**75-** Paşê, piştî wan me Mûsa û Harûn digel mucîzeyên xwe ji bo Firewn û giregirên wî şandin. Lê belê wan xwe qure kir û ew miletekî gunehkar bûn.

**76-** Çi dema ji cem me heqî ji wan re hat, gotin: Ev, teqez sêrbaziyeke aşkera ye.

**77-** Mûsa got: Erê ma çi dema heqî ji bo we bê hûn ê her jê re bibêjin: Ev sêr e? Hal ev e ku sêrbaz tu carî bi ser nakevin.

**78-** Wan got: Ma tu ji bo me hatî da ku me ji wê (ola) ku me bav û kalên xwe li serê dîtin vegerînî û li ser erdê mezinahî bikeve destê we? Hal ev e, em ne ew in ku bi we baweriyê bînin.

وَقَالَ فِرْعَوْنُ ائْتُونِي بِكُلِّ سَاحِرٍ عَلِيمٍ ٧٩ فَلَمَّا جَاءَ السَّحَرَةُ
قَالَ لَهُمْ مُوسَى أَلْقُوا مَا أَنْتُمْ مُلْقُونَ ٨٠ فَلَمَّا أَلْقَوْا قَالَ مُوسَى
مَا جِئْتُمْ بِهِ السِّحْرُ إِنَّ اللَّهَ سَيُبْطِلُهُ إِنَّ اللَّهَ لَا يُصْلِحُ عَمَلَ
الْمُفْسِدِينَ ٨١ وَيُحِقُّ اللَّهُ الْحَقَّ بِكَلِمَاتِهِ وَلَوْ كَرِهَ الْمُجْرِمُونَ
٨٢ فَمَا آمَنَ لِمُوسَى إِلَّا ذُرِّيَّةٌ مِنْ قَوْمِهِ عَلَى خَوْفٍ مِنْ فِرْعَوْنَ
وَمَلَئِهِمْ أَنْ يَفْتِنَهُمْ وَإِنَّ فِرْعَوْنَ لَعَالٍ فِي الْأَرْضِ وَإِنَّهُ
لَمِنَ الْمُسْرِفِينَ ٨٣ وَقَالَ مُوسَى يَا قَوْمِ إِنْ كُنْتُمْ آمَنْتُمْ
بِاللَّهِ فَعَلَيْهِ تَوَكَّلُوا إِنْ كُنْتُمْ مُسْلِمِينَ ٨٤ فَقَالُوا عَلَى اللَّهِ
تَوَكَّلْنَا رَبَّنَا لَا تَجْعَلْنَا فِتْنَةً لِلْقَوْمِ الظَّالِمِينَ ٨٥ وَنَجِّنَا
بِرَحْمَتِكَ مِنَ الْقَوْمِ الْكَافِرِينَ ٨٦ وَأَوْحَيْنَا إِلَى مُوسَى
وَأَخِيهِ أَنْ تَبَوَّآ لِقَوْمِكُمَا بِمِصْرَ بُيُوتًا وَاجْعَلُوا بُيُوتَكُمْ
قِبْلَةً وَأَقِيمُوا الصَّلَاةَ وَبَشِّرِ الْمُؤْمِنِينَ ٨٧ وَقَالَ مُوسَى رَبَّنَا
إِنَّكَ آتَيْتَ فِرْعَوْنَ وَمَلَأَهُ زِينَةً وَأَمْوَالًا فِي الْحَيَاةِ الدُّنْيَا
رَبَّنَا لِيُضِلُّوا عَنْ سَبِيلِكَ رَبَّنَا اطْمِسْ عَلَى أَمْوَالِهِمْ وَاشْدُدْ
عَلَى قُلُوبِهِمْ فَلَا يُؤْمِنُوا حَتَّى يَرَوُا الْعَذَابَ الْأَلِيمَ ٨٨

79- Firewnî got: Her çiqas sêrbazên zana û kone hebin, ji min re bînin.

80- Vêca çi dema sêrbaz hatin, Mûsa ji wan re got: De biavêjin ser erdê ya ku hûn ê biavêjin (û çi ji we tê bikin)

81- Çi dema wan (werîsên xwe) avêtin, Mûsa got: Ya ku we aniye sêr e. Bêguman Xwedê Teala dê pûçîtiya wê derîne rastê. Bêguman Xwedê Teala karên mufsidan li hev rast nayîne.

Weke ayetê jî daye zanîn, sêhrbazî, bes xapandin, sextekarî û gellacî ye. Lewra Mûsa Pêxemberekî mezin e, rind zaniye ku ew pûçî ye û yên ku ew anîne rastê jî tevdanker û xerabkar in.

82- Xwedê, bi fermanên xwe dê heqiyê derîne rastê, çendî li xweşa gunehkaran neçe jî.

83- Vêca (digel dîtina van mucîze û ayetan jî) ji ber tirsa Firewn û giregirên wî ku dê wan bidin ezabê, ji çend kesên qewmê wî pê ve tu kesî bawerî bi Mûsa neanî. Bêguman Firewn li erdê zalimekî desthilatdar bû û bêguman ew ji tixûbbihêran bû.

84- Mûsa got: Ey gelê min! Eger bi rastî we bawerî bi Xwedê Teala aniye, de xwe bispêrin Wî. Eger bi rastî hûn misliman in.

85- Vêca gotin: Me xwe her sparte Xwedê. Xwedayê me! Me bi destê kafir û sitemkaran neceribîne; (me nexe bin destê wan ku azarê bidin me û me ji dînê me vegerînin)!

86- (Xwedayê me!) ji wê civata kafir, bi dilovaniya xwe me rizgar bike!

87- Me peyam da Mûsa û birayê wî (me ji wan re got:) Li Misrê, ji gelê xwe re hin malan amade bikin û mala xwe jî bikin nimêjgeh û di wan de nimêj bikin. (Ey Mûsa!) Mizgîna (serkeftinê) bide bawermendan!

88- Mûsa got: Xwedayê me! Te di jiyana dinyayê de xişr û malekî pir daye Firewn û giregirên wî. Xwedayê me! (Ma te ev nîmet daye wan) da ku mirovan ji riya te vegerînin! Xwedayê me! Malê wan ji navê bibe, dilê wan bi dijwarî mor bike, da ku îmanê neyînin heyanî ku ezabê dijwar nebînin.

قَالَ قَدْ اُجِيبَتْ دَعْوَتُكُمَا فَاسْتَقِيمَا وَلَا تَتَّبِعَٓانِّ سَبِيلَ الَّذِينَ
لَا يَعْلَمُونَ ﴿٨٩﴾ وَجَاوَزْنَا بِبَنٖٓى اِسْرَٓائِيلَ الْبَحْرَ فَاَتْبَعَهُمْ فِرْعَوْنُ
وَجُنُودُهُ بَغْيًا وَعَدْوًاۜ حَتّٰٓى اِذَٓا اَدْرَكَهُ الْغَرَقُۙ قَالَ اٰمَنْتُ اَنَّهُ
لَٓا اِلٰهَ اِلَّا الَّذٖٓى اٰمَنَتْ بِهٖ بَنُٓوا اِسْرَٓائِيلَ وَاَنَا مِنَ الْمُسْلِمِينَ
﴿٩٠﴾ آٰلْـٰٔنَ وَقَدْ عَصَيْتَ قَبْلُ وَكُنْتَ مِنَ الْمُفْسِدِينَ ﴿٩١﴾ فَالْيَوْمَ
نُنَجِّيكَ بِبَدَنِكَ لِتَكُونَ لِمَنْ خَلْفَكَ اٰيَةًۜ وَاِنَّ كَثٖيرًا
مِنَ النَّاسِ عَنْ اٰيَاتِنَا لَغَافِلُونَ ﴿٩٢﴾ وَلَقَدْ بَوَّاْنَا بَنٖٓى اِسْرَٓائِيلَ
مُبَوَّاَ صِدْقٍ وَرَزَقْنَاهُمْ مِنَ الطَّيِّبَاتِۚ فَمَا اخْتَلَفُوا حَتّٰى
جَٓاءَهُمُ الْعِلْمُۜ اِنَّ رَبَّكَ يَقْضٖى بَيْنَهُمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ فٖيمَا كَانُوا
فٖيهِ يَخْتَلِفُونَ ﴿٩٣﴾ فَاِنْ كُنْتَ فٖى شَكٍّ مِمَّٓا اَنْزَلْنَٓا اِلَيْكَ فَسْـَٔلِ
الَّذٖينَ يَقْرَؤُنَ الْكِتَابَ مِنْ قَبْلِكَۚ لَقَدْ جَٓاءَكَ الْحَقُّ مِنْ
رَبِّكَ فَلَا تَكُونَنَّ مِنَ الْمُمْتَرٖينَۙ ﴿٩٤﴾ وَلَا تَكُونَنَّ
مِنَ الَّذٖينَ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِ اللّٰهِ فَتَكُونَ مِنَ الْخَاسِرٖينَ ﴿٩٥﴾
اِنَّ الَّذٖينَ حَقَّتْ عَلَيْهِمْ كَلِمَتُ رَبِّكَ لَا يُؤْمِنُونَۙ ﴿٩٦﴾
وَلَوْ جَٓاءَتْهُمْ كُلُّ اٰيَةٍ حَتّٰى يَرَوُا الْعَذَابَ الْاَلٖيمَ ﴿٩٧﴾

فَلَوْلَا

**89**- Xwedê Teala got: Nifira we qebûl bû, vêca li ser riya rast û durist bimînin û zinhar hûn nedin pey riya wan ên ku nezan in!

**90**- Me îsraîlî di deryayê re derbas kirin, vêca Firewn û leşkerên xwe bi neheqî û bi êrîşkarî dane pey wan, heyanî kete wê rewşa ku binav bibe, (Firewn) got: Bêguman min bawerî anî ku ji bilî wî Xwedayê ku îsraîliyan pê bawerî aniye tu îlah tun in û ez ji mislimanan im!"

**91**- Erê ma vêga (te bawerî anî)? Hal ev e ku te berê pir îsyanî dikir û tu ji fesadan bûy.

**92**- Îro, em ê termê te (ji deryayê) derxin da ku tu ji yên pey xwe re bibî îbret. Bêguman gelek ji mirovan ji ayetên me xafil in, îbretê nagirin.

Firewn beriya di deryayê de bixeniqe li welatê Misrê xwedatiya xwe bang hildêra û got: Gelî civatê! Ez ji bo we ji bilî xwedayekî din nizanim. Ez rebbê we yê herî bilind im! Li hemberî wanên ku wî wek îlah qebûl nekirin, şkenceyên cur be cur bi kar anîn. Nexasim li hemberî Îsraîliyan şkenceya herî dijwar bi kar dianî; kurê wan dikuştin û keçê wan sax dihiştin. Xwedê daxwaza Mûsa û birayê wî Harûn ya ku dixwestin ji Misrê derkevin herin Filistînê qebûl kir. Ji bo ku biçin Filistînê ew jî, hatin devê Deryaya Sor. Firewn ji bo ku tuxmê wan biqelîne û wan bi carekê ji rûyê erdê rake bi artêşa xwe re da pey şopa wan û gihîşt wan. Mûsa bi peyxama ku Xwedê dabûyê; kopalê xwe li deryayê da, di behrê de rê vebû ew tev bi selametî tê re derbas bûn, bi vî awayî gelê xwe derxist Çola Tîhê. Firewn jî xwest di heman rêyê re wan bişopîne. Çi gava gihîşt nîvê behrê û fehm kir, dê xerq bibe, îman bi Xwedê anî. Lêbelê îmana wî nehat pejirandin. Lewra wî bawerî bi pêxemberê Xwedê Mûsa (e.) neanîbû û ew bi sêhrbaziyê îtham kiribû. Ha ji vê îmanê re "Îmana Hêvînemayînê" tê gotin û ew hîç nayê qebûlkirin.

**93**- Bêguman me îsraîlî li welatekî rind bi cih kirin û me rizqekî paqij da wan. Vêca heta zanîn (Tewrat) ji bo wan nehat ew her yek bûn, neketin îxtilafê. Bêguman Xwedayê te, dê roja qiyametê di navbera wan de, di wan mijarên ku tê de ketine îxtilafê, hukim bike.

**94**- (Resûlê min! Ferzî-muhal) Eger tu ji van (rûdan) ên ku me ji te re hinartine bi guman bî, ji wan ên ku beriya te kitêbê (Tewrat û Incîlê) dixwînin, bipirse. Bêguman ji bo te ji Xwedayê te heqî hatiye, vêca tu qet nebe ji şuphekaran!

**95**- Û tu nebe ji wan ên ku bi ayetên Xwedê Teala bawerî nayînin; vêca tu dê bibî ji yên xesirî.

**96**- Bêguman ew ên ku fermana Xwedayê te (bi ezab) li ser wan misoger bûye, ew îmanê nayînin.

**97**- Çendî temamî mucîzeyên (ku ew dixwazin) ji wan re bên jî, dîsa heyanî ezabê xemnak nebînin (ew bawerî nayînin).

فَلَوْلَا كَانَتْ قَرْيَةٌ اٰمَنَتْ فَنَفَعَهَٓا اِيمَانُهَٓا اِلَّا قَوْمَ يُونُسَۜ
لَمَّٓا اٰمَنُوا كَشَفْنَا عَنْهُمْ عَذَابَ الْخِزْيِ فِي الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا
وَمَتَّعْنَاهُمْ اِلٰى حِينٍ ﴿٩٨﴾ وَلَوْ شَٓاءَ رَبُّكَ لَاٰمَنَ مَنْ فِي الْاَرْضِ
كُلُّهُمْ جَمِيعًاۜ اَفَاَنْتَ تُكْرِهُ النَّاسَ حَتّٰى يَكُونُوا مُؤْمِنِينَ ﴿٩٩﴾
وَمَا كَانَ لِنَفْسٍ اَنْ تُؤْمِنَ اِلَّا بِاِذْنِ اللّٰهِۜ وَيَجْعَلُ الرِّجْسَ
عَلَى الَّذِينَ لَا يَعْقِلُونَ ﴿١٠٠﴾ قُلِ انْظُرُوا مَاذَا فِي السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضِۜ وَمَا تُغْنِي الْاٰيَاتُ وَالنُّذُرُ عَنْ قَوْمٍ لَا يُؤْمِنُونَ ﴿١٠١﴾
فَهَلْ يَنْتَظِرُونَ اِلَّا مِثْلَ اَيَّامِ الَّذِينَ خَلَوْا مِنْ قَبْلِهِمْۜ قُلْ فَانْتَظِرُوا
اِنّ۪ي مَعَكُمْ مِنَ الْمُنْتَظِرِينَ ﴿١٠٢﴾ ثُمَّ نُنَجّ۪ي رُسُلَنَا وَالَّذِينَ اٰمَنُوا
كَذٰلِكَۚ حَقًّا عَلَيْنَا نُنْجِ الْمُؤْمِنِينَ ﴿١٠٣﴾ قُلْ يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ اِنْ كُنْتُمْ
ف۪ي شَكٍّ مِنْ د۪ين۪ي فَلَٓا اَعْبُدُ الَّذِينَ تَعْبُدُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ
وَلٰكِنْ اَعْبُدُ اللّٰهَ الَّذ۪ي يَتَوَفّٰيكُمْۚ وَاُمِرْتُ اَنْ اَكُونَ مِنَ
الْمُؤْمِنِينَۙ ﴿١٠٤﴾ وَاَنْ اَقِمْ وَجْهَكَ لِلدِّينِ حَنِيفًاۚ وَلَا تَكُونَنَّ
مِنَ الْمُشْرِكِينَ ﴿١٠٥﴾ وَلَا تَدْعُ مِنْ دُونِ اللّٰهِ مَا لَا يَنْفَعُكَ
وَلَا يَضُرُّكَۚ فَاِنْ فَعَلْتَ فَاِنَّكَ اِذًا مِنَ الظَّالِمِينَ ﴿١٠٦﴾

**98**- Vêca de bila gundek ji wan gundên ku me birin helakê, berî em wan ceza bikin bawerî bianiya da ku baweriya wan feyde bidaya wan. Ji bilî qewmê Yûnus (ew cuda ne); çi dema wan bawerî anî, me ezabê riswaker li dinyayê ji ser wan rakir û heta demekê jî me (parmendiya ji nîmetên) jiyanê da wan.

Çi dema gelê Yûnus înkara wî kirin, ew hêrs bû û ji nava wan derket. Xelkê wî fehm kirin ku êdî ezab dê were wan. Ji nû ve poşman bûn û ji bo ku ezab neyê wan lavelav ji Xwedê kirin. Vêca Xwedê jî tobeya wan qebûl kir û ezab ji ser wan rakir.

**99**- (Resûlê min!) Eger Xwedayê te bivaya, çiqas kesên li ser erdê hene dê hemûyan bawerî bianiya. Erê ma tu li mirovan kotekiyê dikî da ku baweriyê bînin?

**100**- Bêyî destûra Xwedê tu kes nikare baweriyê bîne. Ew, ezabê xwe dide wan ên ku eqilê xwe bi kar nayînin (û li ayetên wî nafikirin).

**101**- Bibêje: De berê xwe bidine erd û asîmanan ka çi di wan de heye? Belge û ayetên Xweda û hişyariya ji ezab tu feydê nadin qewmekî ku bawerî nayînin.

**102**- Ew (muşrik) ji bilî ku çavnêriya rojên xwedî ezab bikin pê ve, mîna rojên ku bi ser wan muşrikên beriya wan de borîn, ew çavnêriya tiştekî din nakin. Bibêje: De heydê çavnêriya ezab bikin, bêguman ez ê jî digel we çavnêriyê (li ezabê we) bikim.

**103**- Piştre, (dema ezab bê) em ê pêxemberên xwe û wan ên ku pê re bawerî anîn (ji ezab) rizgar bikin. Ev wek deynekî ye li me ku em ê (te û) bawermendan jî rizgar bikin.

**104**- Bibêje: Gelî mirovan! Eger hûn di heqê dînê min de gumandar bin, vêca ew ê ku ji bilî Xwedê hûn dihebînin ez wî nahebînim. Lê belê, bes ez ê wî Xwedayê ku we dimirîne bihebînim û ferman li min hatiye kirin ku ez bibim ji mislimanan.

**105**- (Ferman li min hatiye kirin ku ez vê bibêjim:) Berê xwe bide dînê rast û durist, ew ê ji xwariyê dûr û zinhar tu nebe ji muşrikan!

**106**- Ji bilî Xwedê Teala gazî û hawarê negihîne yê ku ne feydê digihîne te, ne jî ziyanê. Êdî eger te ev kir, wê gavê teqez tu ji zaliman î.

وَاِنْ يَمْسَسْكَ اللّٰهُ بِضُرٍّ فَلَا كَاشِفَ لَهُ اِلَّا هُوَ وَاِنْ يُرِدْكَ بِخَيْرٍ فَلَا
رَادَّ لِفَضْلِهِ يُصِيبُ بِهِ مَنْ يَشَاءُ مِنْ عِبَادِهِ وَهُوَ الْغَفُورُ الرَّحِيمُ ﴿١٠٧﴾
قُلْ يَا اَيُّهَا النَّاسُ قَدْ جَاءَكُمُ الْحَقُّ مِنْ رَبِّكُمْ فَمَنِ اهْتَدٰى فَاِنَّمَا
يَهْتَدِي لِنَفْسِهِ وَمَنْ ضَلَّ فَاِنَّمَا يَضِلُّ عَلَيْهَا وَمَا اَنَا عَلَيْكُمْ بِوَكِيلٍ ﴿١٠٨﴾
وَاتَّبِعْ مَا يُوحٰى اِلَيْكَ وَاصْبِرْ حَتّٰى يَحْكُمَ اللّٰهُ وَهُوَ خَيْرُ الْحَاكِمِينَ ﴿١٠٩﴾




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

الٓرٰ كِتَابٌ اُحْكِمَتْ اٰيَاتُهُ ثُمَّ فُصِّلَتْ مِنْ لَدُنْ حَكِيمٍ خَبِيرٍ ﴿١﴾
اَلَّا تَعْبُدُوا اِلَّا اللّٰهَ اِنَّنِي لَكُمْ مِنْهُ نَذِيرٌ وَبَشِيرٌ ﴿٢﴾ وَاَنِ اسْتَغْفِرُوا
رَبَّكُمْ ثُمَّ تُوبُوا اِلَيْهِ يُمَتِّعْكُمْ مَتَاعًا حَسَنًا اِلٰى اَجَلٍ مُسَمًّى
وَيُؤْتِ كُلَّ ذِي فَضْلٍ فَضْلَهُ وَاِنْ تَوَلَّوْا فَاِنِّي اَخَافُ عَلَيْكُمْ عَذَابَ
يَوْمٍ كَبِيرٍ ﴿٣﴾ اِلَى اللّٰهِ مَرْجِعُكُمْ وَهُوَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ ﴿٤﴾ اَلَا
اِنَّهُمْ يَثْنُونَ صُدُورَهُمْ لِيَسْتَخْفُوا مِنْهُ اَلَا حِينَ يَسْتَغْشُونَ ثِيَابَهُمْ
يَعْلَمُ مَا يُسِرُّونَ وَمَا يُعْلِنُونَ اِنَّهُ عَلِيمٌ بِذَاتِ الصُّدُورِ ﴿٥﴾
وَمَا

**107**- Eger Xwedê (ji bo ceribandina te) zerarekê bîne serê te, ji wî pê ve kes nîn e wê ji ser te rake. Eger Xwedê ji bo te qenciyek xwest, kes nîn e rê li ber qenciya wî bigire. Ew ji bendeyên xwe kê bivê xêrê digihîjîne wî. Her Xwedê ye, yê gunehveşêr, yê dilovîn.

**108**- Bibêje: Gelî mirovan! Ji bo we ji cem Xwedayê we rastî (Quran) hat. Êdî kî bê ser riya rast, bes ew ji bo xwe tê. Kî ji rê bikeve, ew jî li dijî xwe ji rê dikeve (gunehê rêşaşiya wî bes jê re ye). Ez li ser we ne berpirs im (bes wezîfeya min ew e ku ez heqiyê ji bo we bibêjim, ne ku bi kotekî we bînim ser riya rast).

**109**- Bide pey wê wehya ku (ji cem Xwedayê te) ji bo te tê hinartin û heyanî Xwedê (di navbera te û miletê te de) hukm bike xwe ragire, sebrê bikêşe. Xwedê Teala çêtirînê hakiman e.

## SÛREYÊ HÛD

Sûreyê Hûd 123 (sed û bîst û sê) ayet e. Ayeta 12an, 17an û 114an li Medîneyê û yên din jî li Mekkeyê daketine. Sûre, navê xwe ji ayetên 50an û 60an girtiye ku di wan de behsa jiyana Hûd Pêxember hatiye kirin.
Pêşî dest bi qiseya Nûh dike ku ew bavê duyem, yê mirovahiyê ye. Lewra ji Nûh û bawermendên ku digel wî siwarî keştiyê bûbûn pê ve tu kes ji Tofanê xilas nebûye.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

**1- Elîf. Lam. Ra.**

Ev (Qur'an) kitêbeke wisa ye ku ayetên wê birêkûpêk in (di wan de nakokî û hevnegirtinî tune ye), paşê ji aliyê Xwedayê Hekîm ê Xebîr ve (bi bal biryar, qise û şîretan ve) hatiye ji hev veqetandin.

**2**- (Xwedê ev kitêb bi vî awayî hinart) da ku hûn ji bilî Xwedê îbadetê çi tiştî nekin. Bêguman ez ji aliyê Xwedê ve ji bo we mizgînber û hişyarker im.

**3**- Û da ku hûn ji Xwedayê xwe daxwaza lêborîna (gunehên) xwe bikin, paşê bi bal wî ve tobe bikin; (êdî) Xwedê dê heta demeke diyarkirî jiyana we bi rindî xweş bike û dê kerema xwe bide çi kesê ku xwedanqencî be. Eger hûn berê xwe (ji îmanê) vegerînin, bêguman ez li ser we ji ezabê rojeke mezin ditirsim (ku ew ê bi ser we de bê).

**4**- (Gelî mirovan!) Vegera we her bi bal Xwedê ve ye û Ew li ser her tiştî kara ye.

**5**- Agahdar bin! Ew (munafiq), sînga xwe li kufr û dijminahiyê didin hev da ku kufra dilê xwe ji Xwedê veşêrin. Hişyar bin, dema ew cilên xwe li xwe dipêçin dîsa Xwedê ya ku ew vedişêrin û ya ku didin der jî dizane. Bêguman Xwedê, bi ya ku di dil û sîngan de veşartî ye agahdar e.

وَمَا مِنْ دَٓابَّةٍ فِى الْاَرْضِ اِلَّا عَلَى اللّٰهِ رِزْقُهَا وَيَعْلَمُ
مُسْتَقَرَّهَا وَمُسْتَوْدَعَهَاۜ كُلٌّ فِى كِتَابٍ مُبِينٍ ٦ وَهُوَ الَّذٖى
خَلَقَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ فٖى سِتَّةِ اَيَّامٍ وَكَانَ عَرْشُهُ عَلَى
الْمَٓاءِ لِيَبْلُوَكُمْ اَيُّكُمْ اَحْسَنُ عَمَلًاۜ وَلَئِنْ قُلْتَ اِنَّكُمْ
مَبْعُوثُونَ مِنْ بَعْدِ الْمَوْتِ لَيَقُولَنَّ الَّذٖينَ كَفَرُٓوا اِنْ هٰذَٓا
اِلَّا سِحْرٌ مُبٖينٌ ٧ وَلَئِنْ اَخَّرْنَا عَنْهُمُ الْعَذَابَ اِلٰٓى اُمَّةٍ
مَعْدُودَةٍ لَيَقُولُنَّ مَا يَحْبِسُهُۜ اَلَا يَوْمَ يَأْتٖيهِمْ لَيْسَ مَصْرُوفًا
عَنْهُمْ وَحَاقَ بِهِمْ مَا كَانُوا بِهٖ يَسْتَهْزِؤُنَ ٨ وَلَئِنْ
اَذَقْنَا الْاِنْسَانَ مِنَّا رَحْمَةً ثُمَّ نَزَعْنَاهَا مِنْهُۚ اِنَّهُ لَيَؤُسٌ
كَفُورٌ ٩ وَلَئِنْ اَذَقْنَاهُ نَعْمَٓاءَ بَعْدَ ضَرَّٓاءَ مَسَّتْهُ لَيَقُولَنَّ
ذَهَبَ السَّيِّـَٔاتُ عَنّٖىۜ اِنَّهُ لَفَرِحٌ فَخُورٌ ١٠ اِلَّا الَّذٖينَ
صَبَرُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِۜ اُولٰٓئِكَ لَهُمْ مَغْفِرَةٌ وَاَجْرٌ
كَبٖيرٌ ١١ فَلَعَلَّكَ تَارِكٌ بَعْضَ مَا يُوحٰٓى اِلَيْكَ وَضَٓائِقٌ
بِهٖ صَدْرُكَ اَنْ يَقُولُوا لَوْلَٓا اُنْزِلَ عَلَيْهِ كَنْزٌ اَوْ جَٓاءَ مَعَهُ
مَلَكٌۜ اِنَّمَٓا اَنْتَ نَذٖيرٌۜ وَاللّٰهُ عَلٰى كُلِّ شَیْءٍ وَكٖيلٌ ١٢

**6**- Çi rêveherekî (ê ku bi rê ve diçe) li ser erdê heye her rizqê wî li ser Xwedê ye, Xwedê cihê ew lê dijî û cihê ew lê bimire jî dizane. Ev tev di kitêbeke aşkera de (di Lewh'ul Mehfûzê de) nivîsandî ne.

**7**- Xwedê ye, ew ê ku erd û asîman di şeş rojan de çêkirin û (berî çêkirina wan) erşê wî li ser avê bû. (Xwedê erd û asîman çêkirin ) da ku we biceribîne; ka ji we karê kê rindtir e. Eger tu (ji wan re) bibêjî: Bêguman piştî mirinê hûn ê bên saxkirin û şandin, ew ên gawir bûne dê bibêjin: Ev (Qur'an) ji sêrbaziyeke aşkera pê ve ne tiştekî din e.

'Erş, cismekî wisa ye ku dor li hemû cismên ku li kaînatê hene girtiye, ji ber bilindiya xwe navê "erş" yanî "ban" girtiye. Li gorî raveya tefsîrzanan a vê ayetê, Xwedê pêşî 'erş, piştre av, piştre asîman û ferş afirandine. Maneya "Erşê wî li ser avê bû" ne ev e ku, bi avê ve bû. Çawa ku tê gotin: Asîman, li ser erdê ye, lêbelê tu kes dê neşêt bibêje: Asîman bi erdê ve ye.

**8**- Sond be, eger em heya demeke bijimar ezab ji ser wan bidin paş, teqez dê bibêjin: Ka ew ezabê ku ji bo me dihat, çi tişt e rê li ber digire? Agahdar bin! Roja ew ezab bi ser wan de tê, ji ser wan nayê vegerandin. Ew ezabê ku wan pê tinaz dikir, dor li wan girtiye.

**9**- Sond be eger em ji aliyê xwe ve dilovanî (û qenciyekê) bi mirov bidin çêjandin paşê jê bistînin, bêguman ew (ji rehma me) zû bêhêvî dibe û qenciyên berê ji bîr dike.

**10**- Sond be eger piştî tengasiyeke ku ew hingaftî em qenciyan pê re bikin, dê teqez bibêje: Tengî û nexweşî ji min çûn (û şukrê Xwedê nake). Bêguman ew mirovekî bitr û qure ye.

**11**- Ji bilî wan ên ku (li hemberî karesatan) xwe ragirtin û karên qenc kirin, ha ew ji bo wan lêborîn û xelateke mezin heye.

**12**- (Ya Muhemmed!) Dibe ku tu (teblîxa) hinekî ji wehya ku ji te re hatî bihêlî û sînga te pê teng bibe; ji ber ku dibêjin: Çima gencîneyek ji Muhemmed re daneketiye, yan jî çima digel wî firîşteyek nehatiye (ku tesdîqa wî kiribûya)?! (Nexwe bi ya ji te re hatî wan hişyar bike) bêguman tu bes hişyarker î û Xweda li ser her tiştî wekîl e.

أَمْ يَقُولُونَ افْتَرٰيهُ قُلْ فَأْتُوا بِعَشْرِ سُوَرٍ مِثْلِهِ مُفْتَرَيَاتٍ
وَادْعُوا مَنِ اسْتَطَعْتُمْ مِنْ دُونِ اللّٰهِ اِنْ كُنْتُمْ صَادِقِينَ
﴿١٣﴾ فَاِلَّمْ يَسْتَجِيبُوا لَكُمْ فَاعْلَمُوا اَنَّمَا اُنْزِلَ بِعِلْمِ اللّٰهِ
وَاَنْ لَا اِلٰهَ اِلَّا هُوَ فَهَلْ اَنْتُمْ مُسْلِمُونَ ﴿١٤﴾ مَنْ كَانَ يُرِيدُ
الْحَيٰوةَ الدُّنْيَا وَزِينَتَهَا نُوَفِّ اِلَيْهِمْ اَعْمَالَهُمْ فِيهَا وَهُمْ فِيهَا
لَا يُبْخَسُونَ ﴿١٥﴾ اُولٰئِكَ الَّذِينَ لَيْسَ لَهُمْ فِي الْاٰخِرَةِ اِلَّا
النَّارُ وَحَبِطَ مَا صَنَعُوا فِيهَا وَبَاطِلٌ مَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿١٦﴾
اَفَمَنْ كَانَ عَلٰى بَيِّنَةٍ مِنْ رَبِّهِ وَيَتْلُوهُ شَاهِدٌ مِنْهُ وَمِنْ قَبْلِهِ
كِتَابُ مُوسٰى اِمَامًا وَرَحْمَةً اُولٰئِكَ يُؤْمِنُونَ بِهِ وَمَنْ يَكْفُرْ
بِهِ مِنَ الْاَحْزَابِ فَالنَّارُ مَوْعِدُهُ فَلَا تَكُ فِي مِرْيَةٍ مِنْهُ اِنَّهُ
الْحَقُّ مِنْ رَبِّكَ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَ النَّاسِ لَا يُؤْمِنُونَ ﴿١٧﴾ وَمَنْ
اَظْلَمُ مِمَّنِ افْتَرٰى عَلَى اللّٰهِ كَذِبًا اُولٰئِكَ يُعْرَضُونَ عَلٰى
رَبِّهِمْ وَيَقُولُ الْاَشْهَادُ هٰؤُلَاءِ الَّذِينَ كَذَبُوا عَلٰى رَبِّهِمْ اَلَا
لَعْنَةُ اللّٰهِ عَلَى الظَّالِمِينَ ﴿١٨﴾ اَلَّذِينَ يَصُدُّونَ عَنْ سَبِيلِ اللّٰهِ
وَيَبْغُونَهَا عِوَجًا وَهُمْ بِالْاٰخِرَةِ هُمْ كَافِرُونَ ﴿١٩﴾

اُولٰئِكَ

**13**- Yan jî ew dibêjin: Muhemmed bi xwe ev Quran ji kîsê xwe lêaniye? Bibêje: De heydê hûn jî deh sûreyên (di fesahet û belaxetê de) weke wê bînin. Eger bi rastî hûn (di doza xwe de) rastgo ne; de ji bilî Xwedê hûn karibin gazî kê dikin bikin (da ji bo we bibin arîkar).

**14**- Eger ew bersiva we nedin, naxwe bizanin ku bes ev Quran bi zanîna Ellah Teala hatiye hinartin û ji wî pê ve tu Xweda nîn in. Erê ma vêca hûn radestî fermana Xwedê nabin?!

**15**- Çi kesê jiyana dinyayê û xemla wê bixwaze, em ê bêkêmasî, beranberî karên wan li dinyayê bidin wan û li dinyayê tiştek li wan nayê kêmkirin,

**16**- Ha ew in yên ku ji bo wan li axîretê ji êgir pê ve tiştekî din nîn e û ya ku (wan li dinyayê) kir berhewa çû û karê ku wan kir pûç û betal bû.

**17**- Erê, ma ew ê ku ji cem Xwedayê xwe li ser delîleke aşkera be û digel vê jî ji teref Xwedê ve şahidek (jê re) hebe û beriya Quranê jî, kitêba Mûsa (Tewrat) ya ku rêber û rehmet bû jê re şahid be, ma mîna yê ku bêdelîl be? Ev ên ha bi Quranê baweriyê tînin (ji wan re bihişt heye). Ji bend û hizban çi kesê bi pêxember û Quranê bawerî neyîne vêca cihê wî agirê dojehê ye. Nexwe bila ji bo te der barê Quranê de gumanek çênebe. Bêguman ev rastiyeke ku ji cem Xwedayê te ye, lê belê pirên mirovan pê bawerî nayînin.

**18**- Erê ma ji wî kesê ku li ser (navê) Ellah Teala derewê lê bîne, zalimtir kî heye? Ha ew, ji Xwedayê xwe re dê bêne rapêşkirin û firîşteyên şahid jî dê bibêjin: Ha ev in ên ku li ser (navê) Xwedayê xwe derew lê dianîn. Agahdar bin, laneta Xwedê li ser zaliman be!

**19**- Ew zalimên ku riya Xwedê li ber mirovan digirin û ji dil û can dixwazin ku xwar nîşan bidin (da ku xelkê jê bidine paş). Ew bi xwe, bi axîretê ne bawer in.

أُولٰٓئِكَ لَمْ يَكُونُوا مُعْجِزِينَ فِي الْاَرْضِ وَمَا كَانَ لَهُمْ مِنْ
دُونِ اللّٰهِ مِنْ اَوْلِيَٓاءَ يُضَاعَفُ لَهُمُ الْعَذَابُ مَا كَانُوا يَسْتَطِيعُونَ
السَّمْعَ وَمَا كَانُوا يُبْصِرُونَ ٢٠ أُولٰٓئِكَ الَّذِينَ خَسِرُٓوا اَنْفُسَهُمْ
وَضَلَّ عَنْهُمْ مَا كَانُوا يَفْتَرُونَ ٢١ لَا جَرَمَ اَنَّهُمْ فِي الْاٰخِرَةِ
هُمُ الْاَخْسَرُونَ ٢٢ اِنَّ الَّذِينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ وَاَخْبَتُٓوا
اِلٰى رَبِّهِمْ اُولٰٓئِكَ اَصْحَابُ الْجَنَّةِ هُمْ فِيهَا خَالِدُونَ ٢٣
مَثَلُ الْفَرِيقَيْنِ كَالْاَعْمٰى وَالْاَصَمِّ وَالْبَصِيرِ وَالسَّمِيعِ هَلْ
يَسْتَوِيَانِ مَثَلًا اَفَلَا تَذَكَّرُونَ ٢٤ وَلَقَدْ اَرْسَلْنَا نُوحًا اِلٰى
قَوْمِهِ اِنّ۪ي لَكُمْ نَذِيرٌ مُبِينٌ ٢٥ اَنْ لَا تَعْبُدُٓوا اِلَّا اللّٰهَ اِنّ۪ٓي
اَخَافُ عَلَيْكُمْ عَذَابَ يَوْمٍ اَلِيمٍ ٢٦ فَقَالَ الْمَلَاُ الَّذِينَ
كَفَرُوا مِنْ قَوْمِهِ مَا نَرٰيكَ اِلَّا بَشَرًا مِثْلَنَا وَمَا نَرٰيكَ
اتَّبَعَكَ اِلَّا الَّذِينَ هُمْ اَرَاذِلُنَا بَادِيَ الرَّأْيِ وَمَا نَرٰى لَكُمْ
عَلَيْنَا مِنْ فَضْلٍ بَلْ نَظُنُّكُمْ كَاذِبِينَ ٢٧ قَالَ يَا قَوْمِ اَرَاَيْتُمْ
اِنْ كُنْتُ عَلٰى بَيِّنَةٍ مِنْ رَبّ۪ي وَاٰتٰينِي رَحْمَةً مِنْ عِنْدِهِ
فَعُمِّيَتْ عَلَيْكُمْ اَنُلْزِمُكُمُوهَا وَاَنْتُمْ لَهَا كَارِهُونَ ٢٨

**20**- Ev (zalim) nikarin Xwedê li ser erdê bêçare bihêlin da ku wan nede cezadan û ji bilî Xwedê ji bo wan çu dost û arîkarek nîn e ku ezabê li ser wan bide paş. Ezabê wan dê qat bi qat zêde bibe. Wan nekariye (dengê heqiyê) bibihîzin û wan heqî jî nedidît.

**21**- Ha ev in, ew ên ku (li dinya û axîretê) zerar li xwe kirin û ew ên ku bi neweyî ji Xwedê re dikirin hevpişk, li ber wan winda bûn.

**22**- Bêşik û şubhe her ew in li axîretê yên herî xesirîne.

**23**- Bêguman ew ên ku bawerî anîn û karên qenc kirin û bi tirs bibal Xwedayê xwe zivirîne ha ew xelkên bihiştê ne û ew ê her û her lê bimînin.

**24**- Rewşa van her du destekan (desteka bawermend û desteka kafir) mîna rewşa yê ker û kor e û mîna rewşa yê biçav û biguh e. Erê ma rewşa her duyan hîç dibe wekî hev? Ma hê jî hûn ji xwe re îbretê nagirin?

**25**- Sond be, me Nûh (bi pêxemberî) ji gelê wî re şand. (Ji qewmê xwe re got): Bêguman ez ji bo we hişyarkerekî aşkera me.

**26**- (Ez li we ferman dikim ku) Bes hûn ji Xwedê re îbadetê bikin! Bêguman ez li ser we ji ezabê rojeke dijwar ditirsim (eger ku hûn ne tenê ji Xwedê re îbadetê bikin).

**27**- Vêca ji gelê Nûh giregirên ku kafir bûne, gotin: Em te jî bes mirovekî mîna xwe dibînin û ji hejarên me yên bêfikir pê ve em tu kesê din li pey te nabînin û em tu çêtiriyeke we jî li ser xwe nabînin heta ji bilî vê, em we derewîn dizanin.

**28**- (Nûh) Got: Gelî miletê min! De ka ji min re bibêjin? Eger ez ji cem Xwedayê xwe li ser nîşanekê bim (ku bixuyê ez pêxember im) û Xwedê ji cem xwe pêxemberî dabe min, vêca ev jî ji ber we hatibe veşartin; erê ku hûn wê nexwazin ma ez ê bi kotekî bi we bidim qebûlkirin?

وَيَا قَوْمِ لَٓا اَسْـَٔلُكُمْ عَلَيْهِ مَالًاۜ اِنْ اَجْرِيَ اِلَّا عَلَى اللّٰهِ وَمَٓا اَنَا
بِطَارِدِ الَّذ۪ينَ اٰمَنُواۜ اِنَّهُمْ مُلَاقُوا رَبِّهِمْ وَلٰكِنّ۪ٓي اَرٰيكُمْ قَوْمًا
تَجْهَلُونَ ﴿٢٩﴾ وَيَا قَوْمِ مَنْ يَنْصُرُن۪ي مِنَ اللّٰهِ اِنْ طَرَدْتُهُمْۜ اَفَلَا
تَذَكَّرُونَ ﴿٣٠﴾ وَلَٓا اَقُولُ لَكُمْ عِنْد۪ي خَزَٓائِنُ اللّٰهِ وَلَٓا اَعْلَمُ الْغَيْبَ
وَلَٓا اَقُولُ اِنّ۪ي مَلَكٌ وَلَٓا اَقُولُ لِلَّذ۪ينَ تَزْدَر۪ٓي اَعْيُنُكُمْ لَنْ
يُؤْتِيَهُمُ اللّٰهُ خَيْرًاۜ اَللّٰهُ اَعْلَمُ بِمَا ف۪ٓي اَنْفُسِهِمْۚ اِنّ۪ٓي اِذًا
لَمِنَ الظَّالِم۪ينَ ﴿٣١﴾ قَالُوا يَا نُوحُ قَدْ جَادَلْتَنَا فَاَكْثَرْتَ جِدَالَنَا
فَأْتِنَا بِمَا تَعِدُنَٓا اِنْ كُنْتَ مِنَ الصَّادِق۪ينَ ﴿٣٢﴾ قَالَ اِنَّمَا
يَأْت۪يكُمْ بِهِ اللّٰهُ اِنْ شَٓاءَ وَمَٓا اَنْتُمْ بِمُعْجِز۪ينَ ﴿٣٣﴾ وَلَا يَنْفَعُكُمْ
نُصْح۪ٓي اِنْ اَرَدْتُ اَنْ اَنْصَحَ لَكُمْ اِنْ كَانَ اللّٰهُ يُر۪يدُ
اَنْ يُغْوِيَكُمْۜ هُوَ رَبُّكُمْ وَاِلَيْهِ تُرْجَعُونَۜ ﴿٣٤﴾ اَمْ يَقُولُونَ افْتَرٰيهُۜ
قُلْ اِنِ افْتَرَيْتُهُ فَعَلَيَّ اِجْرَام۪ي وَاَنَا بَر۪ٓيءٌ مِمَّا تُجْرِمُونَ ﴿٣٥﴾ وَاُوحِيَ
اِلٰى نُوحٍ اَنَّهُ لَنْ يُؤْمِنَ مِنْ قَوْمِكَ اِلَّا مَنْ قَدْ اٰمَنَ فَلَا
تَبْتَئِسْ بِمَا كَانُوا يَفْعَلُونَۚ ﴿٣٦﴾ وَاصْنَعِ الْفُلْكَ بِاَعْيُنِنَا
وَوَحْيِنَا وَلَا تُخَاطِبْن۪ي فِي الَّذ۪ينَ ظَلَمُواۚ اِنَّهُمْ مُغْرَقُونَ ﴿٣٧﴾

وَيَصْنَعُ

**29**- Gelî miletê min! Ez li ser ragihandina fermanên Xwedê tu malî ji we naxwazim. Bes xelata min ji cem Xwedê ye. Ez bawermendan (ji civata xwe) naqewirînim. Bêguman ew dê bigihêne Xwedayê xwe. Lê belê ez we dibînim ku hûn miletekî nezan in.

Xwemezindêr û çavsorên gelê Nûh jê xwestin ku bawermendên belengaz ji derdora xwe biqewirîne, lewra wan li xwe danetanîn ku digel jar û belengazan rûnin. Lêbelê pêxemberê dilovan ne mirovekî wisa bû ku pêşniyara wan hovan qebûl bike. Bi rastî ev yek jî qanûneke îlahî ye ku di her wext û çaxî de pêşî, belengaz bersiva doza heqiyê didin û bi xêra wê ezîz û azad dibin.

**30**- Gelî miletê min! Eger ez wan biqewirînim, kî ye ku min ji ezabê Xwedê biparêze? Ma hûn (vê yekê) nafikirin (û jê ders nagirin)?

**31**- Ez ji bo we nabêjim; gencîneyên Xwedê li bal min in (da ku hûn ji bo dewlemendiya min bidin pey min), ez nepeniyê jî nizanim, ez nabêjim ez firîşte me jî û ji bo wan ên ku di çavên we de bênirx in ez nabêjim ku Xwedê dê qenciyê digel wan neke. Xwedê, bi ya di dilên wan de bêhtir dizane. Eger min ev kir, bêguman hingê ez ji sitemkaran im.

**32**- (Gelê wî) Gotin: Ey Nûh! Te bi me re têkoşîn kir, hem jî di têkoşîna digel me de te zêde dirêj kir. Eger bi rastî tu rast dibêjî, vêca de ka wî ezabê tu me pê ditirsînî, ji bo me bîne.

**33**- (Nûh) Got: Eger Xwedê xwest dê bi ser we de bîne û hûn ê Xwedê neçar jî nehêlin.

**34**- Eger ez bivêm li we şîret bikim jî şîreta min wê tu feydê nede we, eger ku Xwedê Teala jirêketina we vîyabe. Ew perwerdegarê we ye û (paşê) hûn ê lê bêne vegerandin.

**35**- Yan jî ew dibêjin: Muhemmedî Quran ji cem xwe lê aniye? (Ya Muhemmed! Ji wan re) Bibêje: Eger min Quran lê anîbe gunehê wê ji min re ye û ez ji gunehên hûn dikin, bêrî me.

**36**- Wehîy ji Nûh pêxember re hate hinartin; bêguman ji wan ên ku bawerî anîn pê ve êdî ji vir û pê de tu kes bi te baweriyê nayîne. Vêca ji ber neqenciyên ku ew dikin xemgîn nebe.

**37**- (Ey Nûh!) Di bin çavdêriya me de û bi fermana me keştiyê saz bike û der heqê wan ên ku zilim kirine mehdervaniyê ji min neke, bêguman ew ê her bixeniqin.

وَيَصْنَعُ الْفُلْكَ وَكُلَّمَا مَرَّ عَلَيْهِ مَلَأٌ مِنْ قَوْمِهِ سَخِرُوا مِنْهُ
قَالَ اِنْ تَسْخَرُوا مِنَّا فَاِنَّا نَسْخَرُ مِنْكُمْ كَمَا تَسْخَرُونَ ﴿٣٨﴾
فَسَوْفَ تَعْلَمُونَ مَنْ يَأْتِيهِ عَذَابٌ يُخْزِيهِ وَيَحِلُّ عَلَيْهِ
عَذَابٌ مُقِيمٌ ﴿٣٩﴾ حَتّٰى اِذَا جَٓاءَ اَمْرُنَا وَفَارَ التَّنُّورُ قُلْنَا احْمِلْ
فِيهَا مِنْ كُلٍّ زَوْجَيْنِ اثْنَيْنِ وَاَهْلَكَ اِلَّا مَنْ سَبَقَ عَلَيْهِ
الْقَوْلُ وَمَنْ اٰمَنَ وَمَٓا اٰمَنَ مَعَهُٓ اِلَّا قَلِيلٌ ﴿٤٠﴾ وَقَالَ ارْكَبُوا
فِيهَا بِسْمِ اللّٰهِ مَجْرٰيهَا وَمُرْسٰيهَا اِنَّ رَبّ۪ي لَغَفُورٌ رَح۪يمٌ ﴿٤١﴾
وَهِيَ تَجْر۪ي بِهِمْ ف۪ي مَوْجٍ كَالْجِبَالِ وَنَادٰى نُوحٌ اِبْنَهُ
وَكَانَ ف۪ي مَعْزِلٍ يَا بُنَيَّ ارْكَبْ مَعَنَا وَلَا تَكُنْ مَعَ الْكَافِر۪ينَ
﴿٤٢﴾ قَالَ سَاٰو۪ٓي اِلٰى جَبَلٍ يَعْصِمُن۪ي مِنَ الْمَٓاءِ قَالَ لَا عَاصِمَ
الْيَوْمَ مِنْ اَمْرِ اللّٰهِ اِلَّا مَنْ رَحِمَ وَحَالَ بَيْنَهُمَا الْمَوْجُ فَكَانَ
مِنَ الْمُغْرَق۪ينَ ﴿٤٣﴾ وَق۪يلَ يَٓا اَرْضُ ابْلَع۪ي مَٓاءَكِ وَيَا سَمَٓاءُ اَقْلِع۪ي
وَغ۪يضَ الْمَٓاءُ وَقُضِيَ الْاَمْرُ وَاسْتَوَتْ عَلَى الْجُودِيِّ وَق۪يلَ
بُعْدًا لِلْقَوْمِ الظَّالِم۪ينَ ﴿٤٤﴾ وَنَادٰى نُوحٌ رَبَّهُ فَقَالَ رَبِّ اِنَّ ابْن۪ي
مِنْ اَهْل۪ي وَاِنَّ وَعْدَكَ الْحَقُّ وَاَنْتَ اَحْكَمُ الْحَاكِم۪ينَ ﴿٤٥﴾

حزب

38- Nûh pêxember keştî çêdikir. Çi dema giregirên qewmê wî di ber re diborîn tinazên xwe pê dikirin. (Nûh ji wan re) Got: Eger hûn (îro) tinazên xwe bi me dikin, vêca (dema tofan li we rabû) em ê jî tinazên xwe bi we bikin, çawa ku hûn (îro) bi me tinazan dikin.

39- Di nêzîk de hûn ê bizanin ka ezabê riswaker dê ji kê re bê û ezabê daîmî dê bi ser kê de bixurice.

40- Heta fermana me (bi helaka wan) hat û av ji tenûrê fûriya, Me ji Nûh re got: Ji her texlîtên heywanan cotekî (yekî nêr û yeke mê) û -ji bilî yê ku der barê wî de fermana me (bi ezab) heq bûbe- malbata xwe û wan ên ku bi te bawerî anîn jî li keştiyê siwar bike. Jixwe ji hejmareke hindik pê ve tu kesî bawerî pê neanîbû.

41- Nûh got: Li keştiyê siwar bibin, gera wê jî û rawestina wê jî bi navê Xwedê ye. Bêguman Xwedayê min gunehjêbir e, dilovîn e.

42- Keştî, di nava pêlên mîna çiyan de ew digerandin. Nûh, gazî wî kurê xwe kir ku ew ji keştiyê dûr bû: Hey kurê min! Tu jî bi me re siwar be û digel kafiran nebe!

43- Kurê wî gotê: Ez ê hilgerim serê çiyayekî ku ew min ji avê (tofanê) biparêze. (Nûh jê re) Got: Îro, ji bilî mirovê ku Xwedê lê hatibe rehmê li hemberî fermana Xwedê tu parêzkarek nîn e. Pêl kete navbera wan, vêca ew jî bû ji yên binavbûyî.

44- (Piştî ku kafir binav bûn ji erdê û ji asîman re) Hate gotin: Hey erd, ava xwe daqurtîne, ya esmano tu jî barana xwe veke! Av kêm bû û çikiya, ferman bi cih hat, keştî jî li ser Çiyayê **Cûdî** rawestiya û hate gotin: Bila helak û dûrbûna ji dilovaniya Xweda ji civata zalim re be!

Ev çiyayê "Cûdî" yê ku ji bo Nûh Pêxember bûye vehewîngeh çiyayekî li bakurê Kurdistanê ye ku îro dikeve navsînorê Şernexê. Li gorî ayeta 29an a "Sûretê el-Muminûn" ev cihekî pir mubarek, pîroz û bi xêr û bêr e. Pîroziya wî ji duayê Nûh Pêxember tê ku wiha gotibû: " (Xwedayê min!) Min li cihekî pîroz deyne. Tu yî, çêtirînê mazûvanan." Heke Tofan amûtam be, -ku bi îhtîmaleke pir xurt wisa ye- ev der "Dergûşa Şaristaniya Mirovatiyê" ye. Her wiha ji vê derê mirov li çar aliyên cîhanê belav û zêde bûne.

45- Nûh, li ber Xwedayê xwe geriya û (wiha) got: Xwedayê min! Kurê min ji xelkê min e (ew ên te peymana rizgarkirina wan dabû min) û peymana te jî teqez heq e. Tu, dadperwertirê dadweran î.

قَالَ يَا نُوحُ اِنَّهُ لَيْسَ مِنْ اَهْلِكَ اِنَّهُ عَمَلٌ غَيْرُ صَالِحٍ فَلَا
تَسْئَلْنِ مَا لَيْسَ لَكَ بِهِ عِلْمٌ اِنّى اَعِظُكَ اَنْ تَكُونَ مِنَ الْجَاهِلِينَ
﴿٤٦﴾ قَالَ رَبِّ اِنّى اَعُوذُ بِكَ اَنْ اَسْئَلَكَ مَا لَيْسَ لى بِهِ عِلْمٌ
وَاِلَّا تَغْفِرْ لى وَتَرْحَمْنى اَكُنْ مِنَ الْخَاسِرِينَ ﴿٤٧﴾ قيلَ يَا
نُوحُ اهْبِطْ بِسَلَامٍ مِنَّا وَبَرَكَاتٍ عَلَيْكَ وَعَلٰى اُمَمٍ مِمَّنْ
مَعَكَ وَاُمَمٌ سَنُمَتِّعُهُمْ ثُمَّ يَمَسُّهُمْ مِنَّا عَذَابٌ اَليمٌ ﴿٤٨﴾
تِلْكَ مِنْ اَنْبَاءِ الْغَيْبِ نُوحيهَا اِلَيْكَ مَا كُنْتَ تَعْلَمُهَا اَنْتَ
وَلَا قَوْمُكَ مِنْ قَبْلِ هٰذَا فَاصْبِرْ اِنَّ الْعَاقِبَةَ لِلْمُتَّقينَ ﴿٤٩﴾ وَاِلٰى
عَادٍ اَخَاهُمْ هُودًا قَالَ يَا قَوْمِ اعْبُدُوا اللّٰهَ مَا لَكُمْ مِنْ اِلٰهٍ
غَيْرُهُ اِنْ اَنْتُمْ اِلَّا مُفْتَرُونَ ﴿٥٠﴾ يَا قَوْمِ لَا اَسْئَلُكُمْ عَلَيْهِ
اَجْرًا اِنْ اَجْرِىَ اِلَّا عَلَى الَّذى فَطَرَنى اَفَلَا تَعْقِلُونَ ﴿٥١﴾
وَيَا قَوْمِ اسْتَغْفِرُوا رَبَّكُمْ ثُمَّ تُوبُوا اِلَيْهِ يُرْسِلِ السَّمَاءَ
عَلَيْكُمْ مِدْرَارًا وَيَزِدْكُمْ قُوَّةً اِلٰى قُوَّتِكُمْ وَلَا تَتَوَلَّوْا
مُجْرِمينَ ﴿٥٢﴾ قَالُوا يَا هُودُ مَا جِئْتَنَا بِبَيِّنَةٍ وَمَا نَحْنُ
بِتَارِكى اٰلِهَتِنَا عَنْ قَوْلِكَ وَمَا نَحْنُ لَكَ بِمُؤْمِنينَ ﴿٥٣﴾
اِنْ

**46**- Xwedê Teala (jê re) got: Ya Nûh! Nexêr, ew ne ji xelkê te ye. Karê wî karekî ne qenc e. Nexwe tiştê tu pê nizanî ji min nexwaze, bêguman ez li te şîret dikim da ku tu nebî ji nezanan!

Ev ayet dide zanîn ku di navbera mirovan de pêwendiya rasteqîne, dîn e. Mirovên ku bi dînê Xwedê bawer bikin û pêxemberên wî rast bidêrin ew dost û birayên hev ên manewî ne. Çendan tu pêwendiya xwînê û nijadî di nav wan de tune be jî. Mirov çendan bav û birayên hev yên xwînê bin jî, heke di nav wan de pêwendiya dînî tune be li nik Xwedê ew ne tiştekî hev in.

**47**- Nûh got: Xwedayê min! Ez bi te, xwe ji (hêrsa) te diparêzim ku tiştê zanîna min pê tune be ez ê ji te nepirsim. Eger tu li min neborî û li min rehmê nekî, ez ê bibim ji yên xesirî.

**48**- Jê re hat gotin: Ey Nûh! (Ji keştiyê) dakeve, silav û bereketa me li te û wan umetên digel te be! Hin umet hene ku em ê (li dinyayê) bi xweşiyan wan biçêjînin, paşê ji cem me dê ezabekî dijwar bigihîje wan.

**49**- (Resûlê min!) Ha ev (qiseya Nûh pêxember) ji saloxdayînên nehênî ne ku em ji te re peyam dikin. Beriya vê (Quranê) ne te pê zanîbû ne jî gelê te. Nexwe tu jî (mîna Nûh Pêxember) sebrê bikêşe; bêguman encama xêrê bes ji mutteqiyan re ye.

**50**- Me ji gelê Ad re jî birayê wan Hûd (bi pêxemberî şand), got: Ey gelê min! Îbadeta Ellah Teala bikin. We ji wî pê ve tu xweda tune ye. Hûn (bi vê muşrikiya xwe) her derewkar in.

**51**- Ey gelê min! Ez (li ser ragihandina fermanên Xwedê) ji we tu heqdestekê naxwazim. Bes heqê min li ser Xwedê ye; ew ê ku ez dayîm û afirandime. Ma hê jî hûn aqilê xwe bi kar nayînin (ku ez ji bo we şîretkarekî pêbawer im).

**52**- Ey gelê min! Ji Xwedayê xwe lêborîna (gunehên) xwe bixwazin, paşê bi bal ve tobe bikin, ew ê ji asîmanan li ser we baranê bibarîne û ew ê hêzê li ser hêza we zêde bike. Hûn bi gunehkarî berê xwe (ji ya ez we gazî bal ve dikim) nezivirînin.

**53**- Jê re gotin: Ey Hûd! Te mucîzeyeke aşkera ji me re neaniye (ku te rast bidêre), em jî ne ew in ku ji bo gotina te dev ji pûtên xwe berdin û em ne ew in ku bi te bawerî jî bînin.

اِنْ نَقُولُ اِلَّا اعْتَرٰيكَ بَعْضُ اٰلِهَتِنَا بِسُٓوءٍ قَالَ اِنّ۪ٓي اُشْهِدُ اللّٰهَ
وَاشْهَدُٓوا اَنّ۪ي بَر۪ٓيءٌ مِمَّا تُشْرِكُونَ ﴿٥٤﴾ مِنْ دُونِه۪ فَك۪يدُون۪ي جَم۪يعًا
ثُمَّ لَا تُنْظِرُونِ ﴿٥٥﴾ اِنّ۪ي تَوَكَّلْتُ عَلَى اللّٰهِ رَبّ۪ي وَرَبِّكُمْ مَا مِنْ دَٓابَّةٍ
اِلَّا هُوَ اٰخِذٌ بِنَاصِيَتِهَا اِنَّ رَبّ۪ي عَلٰى صِرَاطٍ مُسْتَق۪يمٍ ﴿٥٦﴾ فَاِنْ
تَوَلَّوْا فَقَدْ اَبْلَغْتُكُمْ مَٓا اُرْسِلْتُ بِه۪ٓ اِلَيْكُمْ وَيَسْتَخْلِفُ رَبّ۪ي قَوْمًا
غَيْرَكُمْ وَلَا تَضُرُّونَهُ شَيْـًٔا اِنَّ رَبّ۪ي عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ حَف۪يظٌ ﴿٥٧﴾ وَلَمَّا
جَٓاءَ اَمْرُنَا نَجَّيْنَا هُودًا وَالَّذ۪ينَ اٰمَنُوا مَعَهُ بِرَحْمَةٍ مِنَّا وَنَجَّيْنَاهُمْ
مِنْ عَذَابٍ غَل۪يظٍ ﴿٥٨﴾ وَتِلْكَ عَادٌ جَحَدُوا بِاٰيَاتِ رَبِّهِمْ وَعَصَوْا
رُسُلَهُ وَاتَّبَعُٓوا اَمْرَ كُلِّ جَبَّارٍ عَن۪يدٍ ﴿٥٩﴾ وَاُتْبِعُوا ف۪ي هٰذِهِ الدُّنْيَا
لَعْنَةً وَيَوْمَ الْقِيٰمَةِ اَلَٓا اِنَّ عَادًا كَفَرُوا رَبَّهُمْ اَلَا بُعْدًا لِعَادٍ قَوْمِ
هُودٍ ﴿٦٠﴾ وَاِلٰى ثَمُودَ اَخَاهُمْ صَالِحًا قَالَ يَا قَوْمِ اعْبُدُوا اللّٰهَ
مَا لَكُمْ مِنْ اِلٰهٍ غَيْرُهُ هُوَ اَنْشَاَكُمْ مِنَ الْاَرْضِ وَاسْتَعْمَرَكُمْ
ف۪يهَا فَاسْتَغْفِرُوهُ ثُمَّ تُوبُٓوا اِلَيْهِ اِنَّ رَبّ۪ي قَر۪يبٌ مُج۪يبٌ ﴿٦١﴾ قَالُوا
يَا صَالِحُ قَدْ كُنْتَ ف۪ينَا مَرْجُوًّا قَبْلَ هٰذَٓا اَتَنْهٰينَٓا اَنْ نَعْبُدَ مَا
يَعْبُدُ اٰبَٓاؤُ۬نَا وَاِنَّنَا لَف۪ي شَكٍّ مِمَّا تَدْعُونَٓا اِلَيْهِ مُر۪يبٍ ﴿٦٢﴾

**54**- Bes em dibêjin ku ji pûtên me hinan bi te vedane (û te dîn kirine)! Hûd, (ji wan re) got: Ez Xwedê Teala dikim şahid û hûn jî şahid bin ku bi rastî ez ji wan pûtên ku hûn ji bilî Xwedê, ji Xwedê re dikin hevpişk, dûr û bêrî me.

**55**- Vêca ji bilî Xwedê, hûn û pûtên xwe tev li hemberî min fen û fûtên xwe bikin, paşê qet muhletê jî nedin min.

**56**- Min, xwe sparte wî Ellah Teala yê ku hem Xwedayê min hem jî Xwedayê we ye. Tu rêveherek tune ye ku emrê wî di destê Xweda de nebe û ne di bin desthelatiya wî de be. Bêguman Xwedayê min li ser riyeke rast e.

**57**- Eger hûn berê xwe (ji baweriyê) vegerînin, bêguman ew a ez pê hatim, min gihande we û Xwedayê min dê qewmekî din têxe şûna we û hûn qet nikarin zerarekê jî bidin Wî. Bêguman Xwedayê min li ser her tiştî çavdêr e.

**58**- Çi dema fermana me (bi tunekirina kafiran) hat, me bi rehmetekê ji cem xwe Hûd û ew ên ku ligel wî ku wan pê bawerî anîbû rizgar kirin û me ew ji ezabekî dijwar û giran xelas kirin.

**59**- Ha ew (gor û şûnwarên gelê) Ad in; ayetên Xwedayê xwe mandel kirin, li ber pêxemberên wî rabûn û dane pey fermana her zordarekî rikdar.

**60**- Hem li vê dinyayê hem jî li roja qiyametê lanet li wan hat kirin. Agahdar bin, gelê Ad Xwedayê xwe mandel kir. Agahdar bin, dûrbûn û helak ji bo Ad be, ew ê ku ji qewmê Hûd e.

Her wiha Ad bi bahozekê ku heft şev û heşt rojan li pey hev bariya, helak bûn û weke darên ku ji kokê hilbûbin, ew jî ketin erdê.

**61**- Me, ji gelê Semûd re jî birayê wan Salih (bi pêxemberî şand û ji wan re wiha) got: Ey gelê min! Îbadetê Ellah Teala bikin, ji wî pê ve ji bo we tu xweda nîn in. Ellah Teala hûn ji axê afirandin û hûn li wê kirine avaker û niştecih. Nexwe ji Ellah Teala lêborîna (gunehên) xwe bixwazin, paşê bi bal ve tobe bikin. Bêguman Xwedayê min, nêzîk e, bersivdar e.

**62**- Jê re gotin: Ey Salih! Beriya vê (gotina te) di nav me de hêviya me tu bûyî. Ma vêga tu nahêlî ku em wan (pût)ên ku bav û kalên me ew dihebandin, bihebînin? Bêguman em ji wê yekdêrîna (tewhîda) ku tu me vedixwênî balê ji dilûcan biguman in.

قَالَ يَا قَوْمِ اَرَاَيْتُمْ اِنْ كُنْتُ عَلٰى بَيِّنَةٍ مِنْ رَبّ۪ي وَاٰتٰين۪ي
مِنْهُ رَحْمَةً فَمَنْ يَنْصُرُن۪ي مِنَ اللّٰهِ اِنْ عَصَيْتُهُ فَمَا تَز۪يدُونَن۪ي
غَيْرَ تَخْس۪يرٍ ﴿٦٣﴾ وَيَا قَوْمِ هٰذِه۪ نَاقَةُ اللّٰهِ لَكُمْ اٰيَةً فَذَرُوهَا
تَأْكُلْ ف۪ٓي اَرْضِ اللّٰهِ وَلَا تَمَسُّوهَا بِسُٓوءٍ فَيَأْخُذَكُمْ عَذَابٌ
قَر۪يبٌ ﴿٦٤﴾ فَعَقَرُوهَا فَقَالَ تَمَتَّعُوا ف۪ي دَارِكُمْ ثَلٰثَةَ اَيَّامٍ
ذٰلِكَ وَعْدٌ غَيْرُ مَكْذُوبٍ ﴿٦٥﴾ فَلَمَّا جَٓاءَ اَمْرُنَا نَجَّيْنَا
صَالِحًا وَالَّذ۪ينَ اٰمَنُوا مَعَهُ بِرَحْمَةٍ مِنَّا وَمِنْ خِزْيِ يَوْمِئِذٍ
اِنَّ رَبَّكَ هُوَ الْقَوِيُّ الْعَز۪يزُ ﴿٦٦﴾ وَاَخَذَ الَّذ۪ينَ ظَلَمُوا الصَّيْحَةُ
فَاَصْبَحُوا ف۪ي دِيَارِهِمْ جَاثِم۪ينَ ﴿٦٧﴾ كَاَنْ لَمْ يَغْنَوْا ف۪يهَا
اَلَٓا اِنَّ ثَمُودَا كَفَرُوا رَبَّهُمْ اَلَا بُعْدًا لِثَمُودَ ﴿٦٨﴾ وَلَقَدْ جَٓاءَتْ
رُسُلُنَٓا اِبْرٰه۪يمَ بِالْبُشْرٰى قَالُوا سَلَامًا قَالَ سَلَامٌ فَمَا
لَبِثَ اَنْ جَٓاءَ بِعِجْلٍ حَن۪يذٍ ﴿٦٩﴾ فَلَمَّا رَٓا اَيْدِيَهُمْ لَا تَصِلُ
اِلَيْهِ نَكِرَهُمْ وَاَوْجَسَ مِنْهُمْ خ۪يفَةً قَالُوا لَا تَخَفْ اِنَّٓا
اُرْسِلْنَٓا اِلٰى قَوْمِ لُوطٍ ﴿٧٠﴾ وَامْرَاَتُهُ قَٓائِمَةٌ فَضَحِكَتْ
فَبَشَّرْنَاهَا بِاِسْحٰقَ وَمِنْ وَرَٓاءِ اِسْحٰقَ يَعْقُوبَ ﴿٧١﴾
قَالَتْ

**63-** Salih got: Ey gelê min! Ma hûn dê ji vê re çi bêjin eger ez ji Xwedayê xwe li ser mucîzeyeke aşkera bim û wî ji nik xwe rehmetek (pêxemberî) dabe min? Di vê rewşê de eger ez li ber Xwedê rabim, kî wê min ji (ezabê) wî biparêze? Hûn bi vê (şîreta xwe) ji zerarê pê ve (tu feydê) nadin min.

**64-** Ey gelê min! Ha va ye deveya Xwedê Teala ji bo we mucîzeyek e! Wê serbest bihêlin, bila li erda Xwedê bixwe, (vexwe) û bi tu awayî wê neêşînin, vêca (eger hûn wê biêşînin) ezabekî nêzîk dê we bigire.

Li gorî rîwayetan, gelê Salih Pêxember jê xwestine ku ji wan re bi mucîzetî ji zinarekî devehekê bîne der. Salih piştî soza îmanê ji wan wergirt, nimêj kir û li ber Xwedê geriya. Vêca bi mucîzetî ji zinarekî mezin devehek derhatiye. Piştre vê devehê golikeke wekî xwe mezin anî. Lêbelê dîsa jî, ji gelê wî mirovine pir hindik bawerî anîne û yên din jî li ser kufra xwe mane.

**65-** Vêca (wan guhê xwe nedan Salih Pêxember û) deve şerjê kirin. Salih got: Sê rojan di malên xwe de bi dilxweşî bijîn, (piştre hûn ê helak bibin), ev civan peymaneke rast e û bêderew e.

**66-** Çi dema fermana me (bi cezadana wan) hat, me bi dilovaniyeke ji cem xwe Salih û yên digel wî, wan ên ku bawerî anîbû, ji ezab û riswahiya wê rojê rizgar kirin. Bêguman Xwedayê te, her Ew e yê hêzdar, yê desthelatdar.

**67-** Ew ên ku zilim kirin, dengekî dijwar ew hingaftin, vêca di malên xwe de li ser ejnûyên (çokên) xwe mirî û rawestî man.

**68-** (Wisa li wan hat) her wekî ew qet li wê akincî nebûbûn, ji xaniyên wan çi tişt li şûnê nemabû. Agahdar bin, gelê Semûd Xwedayê xwe mandel kir. Agahdar bin, helak û dûrketina ji dilovaniya Xwedê ji bo gelê Semûd be.

**69-** Sond be qasidên me ji Îbrahîm re mizgînî anîn û (jê re wisa) gotin: Silav li te be. Îbrahîm jî got: Silav li we be jî. Vêca di demeke pir kin de ji wan re golikekî biraştî anî.

**70-** Çi dema (Îbrahîm) dît ku wa ye destên wan dirêjî xwarinê nabe, ev yek lê xweş nehat û ji wan saw girt. (Vêca jê re) gotin: Netirse! Bêguman em (ferişte ne, xwarinê naxwin û em) ji bo qewmê Lût hatine şandin (da ku em wan helak bikin).

**71-** Di wê navê de jina Îbrahîm (Sara Xanim xizmeta wan dikir û) li piyan bû. Vêca (dema xebera helaka gelê Lût Pêxember bihîst ji kêfan) keniya. Êdî me, mizgîn bi çêbûna Îshaq û di pey Îshaq re jî bi çêbûna Yaqûb dayê.

قَالَتْ يَا وَيْلَتٰى ءَاَلِدُ وَاَنَا عَجُوزٌ وَهٰذَا بَعْلٖى شَيْخًا اِنَّ هٰذَا
لَشَیْءٌ عَجٖيبٌ ﴿٧٢﴾ قَالُوا اَتَعْجَبٖينَ مِنْ اَمْرِ اللّٰهِ رَحْمَتُ اللّٰهِ
وَبَرَكَاتُهُ عَلَيْكُمْ اَهْلَ الْبَيْتِ اِنَّهُ حَمٖيدٌ مَجٖيدٌ ﴿٧٣﴾ فَلَمَّا ذَهَبَ عَنْ
اِبْرٰهٖيمَ الرَّوْعُ وَجَاءَتْهُ الْبُشْرٰى يُجَادِلُنَا فٖى قَوْمِ لُوطٍ ﴿٧٤﴾
اِنَّ اِبْرٰهٖيمَ لَحَلٖيمٌ اَوَّاهٌ مُنٖيبٌ ﴿٧٥﴾ يَا اِبْرٰهٖيمُ اَعْرِضْ عَنْ
هٰذَا اِنَّهُ قَدْ جَاءَ اَمْرُ رَبِّكَ وَاِنَّهُمْ اٰتٖيهِمْ عَذَابٌ غَيْرُ مَرْدُودٍ
﴿٧٦﴾ وَلَمَّا جَاءَتْ رُسُلُنَا لُوطًا سٖیءَ بِهِمْ وَضَاقَ بِهِمْ ذَرْعًا وَقَالَ
هٰذَا يَوْمٌ عَصٖيبٌ ﴿٧٧﴾ وَجَاءَهُ قَوْمُهُ يُهْرَعُونَ اِلَيْهِ وَمِنْ قَبْلُ
كَانُوا يَعْمَلُونَ السَّيِّئَاتِ قَالَ يَا قَوْمِ هٰؤُلَاءِ بَنَاتٖى هُنَّ اَطْهَرُ لَكُمْ
فَاتَّقُوا اللّٰهَ وَلَا تُخْزُونِ فٖى ضَيْفٖى اَلَيْسَ مِنْكُمْ رَجُلٌ رَشٖيدٌ
﴿٧٨﴾ قَالُوا لَقَدْ عَلِمْتَ مَا لَنَا فٖى بَنَاتِكَ مِنْ حَقٍّ وَاِنَّكَ لَتَعْلَمُ
مَا نُرٖيدُ ﴿٧٩﴾ قَالَ لَوْ اَنَّ لٖى بِكُمْ قُوَّةً اَوْ اٰوٖى اِلٰى رُكْنٍ شَدٖيدٍ
﴿٨٠﴾ قَالُوا يَا لُوطُ اِنَّا رُسُلُ رَبِّكَ لَنْ يَصِلُوا اِلَيْكَ فَاَسْرِ بِاَهْلِكَ
بِقِطْعٍ مِنَ الَّيْلِ وَلَا يَلْتَفِتْ مِنْكُمْ اَحَدٌ اِلَّا امْرَاَتَكَ اِنَّهُ مُصٖيبُهَا
مَا اَصَابَهُمْ اِنَّ مَوْعِدَهُمُ الصُّبْحُ اَلَيْسَ الصُّبْحُ بِقَرٖيبٍ ﴿٨١﴾

**72-** (Sara Xanim) Got: Wey li vê hetîketiyê! Ez ê bi vê pîrejinîtiya xwe, çawa bibim xwedanzarok û ha ev malxweyê min jî pîremêrek e. Bêguman ev (çêbûna zarokan ji du kalan) tiştekî ecêb e!

**73-** (Ferîşteyan) gotin: Ma tu ji fermana Xwedê Teala şaşwaz dibî? Gelî xelkê mala Îbrahîm! Rehmet û bereketa Xwedê li ser we ye. Bêguman Xwedê hêjayê pesindayînê ye, qencîpir e.

**74-** Vêca dema tirs ji Îbrahîm çû û mizgînî (bi dayîna Îshaq û Yaqûb) jê re hat, der barê (helaka) gelê Lût de bi qasidên me re dest bi têkoşînê kir (dilnermiyê ew girt û xwest ku ezab ji ser qewmê Lût bê hilanîn).

**75-** Bêguman Îbrahîm ji dil, mirovekî bêhnfireh û diltenik, (ji tirsa Xwedê jî) dilbiêş û tobedar bû.

**76-** (Ferîşteyan got:) Ey Îbrahîm! Dev ji vê (nîqaşê) berde. Bêguman fermana Rebê te (bi ezabdayînê) hat û ezabekî bêveger teqez dê bi ser wan de bê.

**77-** Dema qasidên me hatin cem Lût, ji ber wan xemgîn bû û bêhna wî teng bû û got: Ev, rojeke dijwar e.

Lewra milyaket di dirûvê xortên ciwan de hatibûn. Ji wî jî were ku ew, bi rastî însan in û ji dil tirsiyabû ku gelê wî xerabiyê bi wan bike.

**78-** (Dema firîşte di dirûvê xortên ciwan de dîtin) bi lez hatin cem Lût, hê berê jî wan karên kirêt dikirin (eleqe bi zilaman dikirin). (Lût ji wan re) Got: Ey gelê min! Ha va ne keçên min (bi wan re bizewicin), ew ji bo we ji mêran paqijtir in. Ji Xwedê bitirsin û li pêşberî mêvanên min, min fedîkar nekin! Ma di nav we de zilamekî aqilmend tune ye (ku nehêle hûn vê xerabiyê bikin)?

**79-** ( Jê re) Gotin: (Ey Lût!) Tu zanî ku tu hewcehiya me bi keçên te tune ye û tu zanî ku em çi jî dixwazin.

**80-** (Lût ji wan re) Got: Xwezî min hêzek hebûya ku li hemberî we min xwe biparasta yan jî min xwe biavêta ber keleyeke asê û xurt (wê demê min dê çi bianiya serê we).

**81-** (Dema firîşteyan ev rewşa çetîn dîtin jê re wiha) Gotin: Ya Lût! Em qasidên Xwedayê te ne. Ew hîç neşên destên xwe li te bidin. Di demeke şevê de digel xelkê xwe derkeve rê. Bila tu kes ji we bi paş xwe ve jî nemêzînê, ji bilî pîreka te. Bêguman ew ezabê ku dê bê serê wan, teqez dê bê serê wê jî. Bêguman civanê helaka wan spêde ye, erê ma spêde ne nêzîk e?

فَلَمَّا جَٓاءَ اَمْرُنَا جَعَلْنَا عَالِيَهَا سَافِلَهَا وَاَمْطَرْنَا عَلَيْهَا
حِجَارَةً مِنْ سِجّ۪يلٍ مَنْضُودٍ ﴿٨٢﴾ مُسَوَّمَةً عِنْدَ رَبِّكَ وَمَا
هِيَ مِنَ الظَّالِم۪ينَ بِبَع۪يدٍ ﴿٨٣﴾ وَاِلٰى مَدْيَنَ اَخَاهُمْ شُعَيْبًا
قَالَ يَا قَوْمِ اعْبُدُوا اللّٰهَ مَا لَكُمْ مِنْ اِلٰهٍ غَيْرُهُ وَلَا
تَنْقُصُوا الْمِكْيَالَ وَالْم۪يزَانَ اِنّ۪ٓي اَرٰيكُمْ بِخَيْرٍ وَاِنّ۪ٓي
اَخَافُ عَلَيْكُمْ عَذَابَ يَوْمٍ مُح۪يطٍ ﴿٨٤﴾ وَيَا قَوْمِ اَوْفُوا
الْمِكْيَالَ وَالْم۪يزَانَ بِالْقِسْطِ وَلَا تَبْخَسُوا النَّاسَ
اَشْيَٓاءَهُمْ وَلَا تَعْثَوْا فِي الْاَرْضِ مُفْسِد۪ينَ ﴿٨٥﴾ بَقِيَّتُ اللّٰهِ
خَيْرٌ لَكُمْ اِنْ كُنْتُمْ مُؤْمِن۪ينَ وَمَٓا اَنَا عَلَيْكُمْ بِحَف۪يظٍ
﴿٨٦﴾ قَالُوا يَا شُعَيْبُ اَصَلٰوتُكَ تَأْمُرُكَ اَنْ نَتْرُكَ مَا يَعْبُدُ
اٰبَٓاؤُنَٓا اَوْ اَنْ نَفْعَلَ ف۪ٓي اَمْوَالِنَا مَا نَشٰٓؤُا اِنَّكَ لَاَنْتَ الْحَل۪يمُ
الرَّش۪يدُ ﴿٨٧﴾ قَالَ يَا قَوْمِ اَرَاَيْتُمْ اِنْ كُنْتُ عَلٰى بَيِّنَةٍ مِنْ
رَبّ۪ي وَرَزَقَن۪ي مِنْهُ رِزْقًا حَسَنًا وَمَٓا اُر۪يدُ اَنْ اُخَالِفَكُمْ
اِلٰى مَٓا اَنْهٰيكُمْ عَنْهُ اِنْ اُر۪يدُ اِلَّا الْاِصْلَاحَ مَا اسْتَطَعْتُ
وَمَا تَوْف۪يق۪ٓي اِلَّا بِاللّٰهِ عَلَيْهِ تَوَكَّلْتُ وَاِلَيْهِ اُن۪يبُ ﴿٨٨﴾

وَيَا قَوْمِ

**82**- Vêca çi dema fermana me (bi cezadana wan) hat, me gundê wan serûbinî hev kir û me keviren ji heriya pehtî bi ser wan de barandin.

**83**- (Ew kevir) ji cem Xwedayê te ve nîşankirî bûn û ew (kevir) ji sitemkaran ne dûr in (dê her bi ser wan de bibarin).

**84**- Me, ji gelê Medyenê re jî, birayê wan Şueyb (bi pêxemberî) şand. (Şueyb ji wan re) Got: Ey gelê min! Îbadetê Ellah Teala bikin, ji bilî wî ji bo we tu xweda nîn in. Kêşan û pîvanê kêm nekin. Bêguman ez we di xweşiyê de dibînim û bêguman ez ji bo we ji ezabê rojeke dorgir, ditirsim.

**85**- Gelî miletê min! Kêşan û pîvanê bi edaletî temam bikin, ji mafên mirovan tiştekî kêm nedin wan û li ser erdê gelacî û tevdanê mekin.

**86**- Eger hûn bi rastî bawermend in a ku ji helalê Xwedê ji we re dimîne, ji bo we çêtir e (ji ya ku bi kêmkirina kêşan û pîvanê we bi destxistî). Ez li ser we ne çavdêr im (belê ez ji bo we şîretkar im).

**87**- (Tinazên xwe pê kirin û jê re) Gotin: Ey Şueyb! Ma nimêja te li te ferman dike ku em dev ji perestina wan (pûtan) berdin, ew ên ku bav û kalên me ew diperestin, an jî em bi kêfa xwe teserufatiyê di malê xwe de nekin? Bêguman tu mirovekî bêhnfireh û aqilmend î.

**88**- (Şueyb ji wan re) Got: Gelî miletê min! Ma hûn dê ji vê re çi bibêjin, eger ez ji Xwedayê xwe li ser mucîzeyeke aşkera bim û wî ji aliyê xwe rizqekî fireh û helal dabe min! Ez naxwazim li dijî we biçim û ya ku ez wê bikim li we jî qedexe bikim. Ez tenê bi qasî ji min bê, dixwazim (karê dinya û axîretê ji bo we) rast bikim. Serkeftina min bes bi arîkariya Xwedê Teala ye. Bes min xwe spartiye wî û tenê ez ê lê vegerim.

وَيَا قَوْمِ لَا يَجْرِمَنَّكُمْ شِقَاق۪ٓي اَنْ يُص۪يبَكُمْ مِثْلُ مَٓا
اَصَابَ قَوْمَ نُوحٍ اَوْ قَوْمَ هُودٍ اَوْ قَوْمَ صَالِحٍ وَمَا قَوْمُ
لُوطٍ مِنْكُمْ بِبَع۪يدٍ ﴿٨٩﴾ وَاسْتَغْفِرُوا رَبَّكُمْ ثُمَّ تُوبُٓوا
اِلَيْهِ اِنَّ رَبّ۪ي رَح۪يمٌ وَدُودٌ ﴿٩٠﴾ قَالُوا يَا شُعَيْبُ مَا نَفْقَهُ
كَث۪يرًا مِمَّا تَقُولُ وَاِنَّا لَنَرٰيكَ ف۪ينَا ضَع۪يفًا وَلَوْلَا رَهْطُكَ
لَرَجَمْنَاكَ وَمَٓا اَنْتَ عَلَيْنَا بِعَز۪يزٍ ﴿٩١﴾ قَالَ يَا قَوْمِ اَرَهْط۪ٓي
اَعَزُّ عَلَيْكُمْ مِنَ اللّٰهِ وَاتَّخَذْتُمُوهُ وَرَٓاءَكُمْ ظِهْرِيًّا اِنَّ رَبّ۪ي
بِمَا تَعْمَلُونَ مُح۪يطٌ ﴿٩٢﴾ وَيَا قَوْمِ اعْمَلُوا عَلٰى مَكَانَتِكُمْ
اِنّ۪ي عَامِلٌ سَوْفَ تَعْلَمُونَ مَنْ يَأْت۪يهِ عَذَابٌ يُخْز۪يهِ وَمَنْ هُوَ
كَاذِبٌ وَارْتَقِبُٓوا اِنّ۪ي مَعَكُمْ رَق۪يبٌ ﴿٩٣﴾ وَلَمَّا جَٓاءَ اَمْرُنَا نَجَّيْنَا
شُعَيْبًا وَالَّذ۪ينَ اٰمَنُوا مَعَهُ بِرَحْمَةٍ مِنَّا وَاَخَذَتِ الَّذ۪ينَ
ظَلَمُوا الصَّيْحَةُ فَاَصْبَحُوا ف۪ي دِيَارِهِمْ جَاثِم۪ينَ ﴿٩٤﴾ كَاَنْ
لَمْ يَغْنَوْا ف۪يهَا اَلَا بُعْدًا لِمَدْيَنَ كَمَا بَعِدَتْ ثَمُودُ ﴿٩٥﴾ وَلَقَدْ
اَرْسَلْنَا مُوسٰى بِاٰيَاتِنَا وَسُلْطَانٍ مُب۪ينٍ ﴿٩٦﴾ اِلٰى فِرْعَوْنَ
وَمَلَا۬ئِه۪ فَاتَّبَعُٓوا اَمْرَ فِرْعَوْنَ وَمَٓا اَمْرُ فِرْعَوْنَ بِرَش۪يدٍ ﴿٩٧﴾

**89**- Gelî miletê min! Zinhar bila dijminiya we ya li hemberî min, karesateke weke ya ku hatiye serê gelê Nûh û gelê Hûd û gelê Salih, neyîne serê we jî! Gelê Lût jî, ji we ve ne dûr e (ew di demeke nêz de helak bûn û ji navê çûn, qey hûn ji karesata ku hatiye serê wan îbretê nagirin!).

**90**- (Gelî miletê min!) Ji Xwedayê xwe lêborîna (gunehên) xwe bixwazin, piştre (ji şaşiyên xwe) poşman bibin û li Xwedê Teala vegerin. Bêguman Xwedayê min (ji bendeyên xwe re) dilovîn e, hezjêker e.

**91**- (Jê re) Gotin: Ey Şueyb! Em ji gotinên ku tu dibêjî pir fehm nakin û bi rastî em te di nav xwe de lawaz û bêhêz dibînin! Eger ne ji xatirê eşîra te bûya teqez me dê tu bi keviran bikuştaya. Tu li cem me ne birêz û birûmet î (ku em nikaribin te birecimînin).

**92**- (Şueyb) Got: Gelî miletê min! Ma li gorî we eşîra min ji Xwedê Teala bi rûmettir e (ku ji bo xatirê wê hûn min nakujin), rewş ev e hûn (fermanên) Xwedê diavêjin pişt (guhê) xwe (û hûn wan bêrûmet digirin). Bêguman Xwedayê min bi ya ku hûn dikin dizane, tiştek ji ber winda nabe.

**93**- Gelî miletê min! Çi ji we tê bikin, bi rastî ez ê jî (wezîfa xwe) bikim. Di nêz de hûn ê bizanin ka ezab ji bo kê tê ku wî riswa bike û ka kî ye yê derewîn. De heydê çavnêriyê (li encama karê xwe) bikin, ez jî di digel we çavnêriyê dikim.

**94**- Dema fermana me (bi helaka wan) hat, me bi dilovaniyeke ji cem xwe Şueyb û ew ên ku wan digel wî bawerî anîbû (ji ezab) xelas kirin. Ew ên ku zalim bûn, qîreke dijwar ew girtin vêca di xaniyên xwe de li ser çoka xwe mirî û bêbizav man.

**95**- Her wekî ku ew li wê derê akincî nemabin û xanî li wê derê ava nebûbin. Agahdar bin! Ka çawa gelê Semûd ji dilovaniya Xwedê dûr bûye, her wisa gelê Medyenê jî, jê dûr bû.

**96**- Sond be, me Mûsa jî bi mucîzeyên xwe û bi nîşanên aşkera şand.

**97**- (Me ew) ji Firewn û giregirên wî re şand. Lê belê wan bi gotina fermana Firewn kir. Hal ev e ku fermana Firewnî ne rast bû.

يَقْدُمُ قَوْمَهُ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ فَاَوْرَدَهُمُ النَّارَ وَبِئْسَ الْوِرْدُ
الْمَوْرُودُ ﴿٩٨﴾ وَاُتْبِعُوا فٖى هٰذِهٖ لَعْنَةً وَيَوْمَ الْقِيٰمَةِ بِئْسَ
الرِّفْدُ الْمَرْفُودُ ﴿٩٩﴾ ذٰلِكَ مِنْ اَنْبَٓاءِ الْقُرٰى نَقُصُّهُ عَلَيْكَ مِنْهَا
قَٓائِمٌ وَحَصٖيدٌ ﴿١٠٠﴾ وَمَا ظَلَمْنَاهُمْ وَلٰكِنْ ظَلَمُٓوا اَنْفُسَهُمْ
فَمَٓا اَغْنَتْ عَنْهُمْ اٰلِهَتُهُمُ الَّتٖى يَدْعُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ مِنْ شَىْءٍ
لَمَّا جَٓاءَ اَمْرُ رَبِّكَ وَمَا زَادُوهُمْ غَيْرَ تَتْبٖيبٍ ﴿١٠١﴾ وَكَذٰلِكَ
اَخْذُ رَبِّكَ اِذَٓا اَخَذَ الْقُرٰى وَهِىَ ظَالِمَةٌ اِنَّ اَخْذَهُٓ اَلٖيمٌ شَدٖيدٌ
﴿١٠٢﴾ اِنَّ فٖى ذٰلِكَ لَاٰيَةً لِمَنْ خَافَ عَذَابَ الْاٰخِرَةِ ذٰلِكَ يَوْمٌ
مَجْمُوعٌ لَهُ النَّاسُ وَذٰلِكَ يَوْمٌ مَشْهُودٌ ﴿١٠٣﴾ وَمَا نُؤَخِّرُهُٓ اِلَّا
لِاَجَلٍ مَعْدُودٍ ﴿١٠٤﴾ يَوْمَ يَأْتِ لَا تَكَلَّمُ نَفْسٌ اِلَّا بِاِذْنِهٖ
فَمِنْهُمْ شَقِىٌّ وَسَعٖيدٌ ﴿١٠٥﴾ فَاَمَّا الَّذٖينَ شَقُوا فَفِى النَّارِ لَهُمْ
فٖيهَا زَفٖيرٌ وَشَهٖيقٌ ﴿١٠٦﴾ خَالِدٖينَ فٖيهَا مَا دَامَتِ السَّمٰوَاتُ
وَالْاَرْضُ اِلَّا مَا شَٓاءَ رَبُّكَ اِنَّ رَبَّكَ فَعَّالٌ لِمَا يُرٖيدُ ﴿١٠٧﴾ وَاَمَّا
الَّذٖينَ سُعِدُوا فَفِى الْجَنَّةِ خَالِدٖينَ فٖيهَا مَا دَامَتِ السَّمٰوَاتُ
وَالْاَرْضُ اِلَّا مَا شَٓاءَ رَبُّكَ عَطَٓاءً غَيْرَ مَجْذُوذٍ ﴿١٠٨﴾

فَلَا تَكُ

**98**- Ew (Firewn) dê roja qiyametê bide pêşiya gelê xwe û wan bibe dojehê. Cihê ku ew herinê çi cihekî pîs e!

**99**- Ew hem li vê dinyayê hem jî roja qiyametê ji dilovaniya Xwedê hatine dûrxistin. Ev xelata ku ji wan re hatiye dayîn, çi pîs xelat e!

**100**- (Resûlê min!) Ha ev ên ha, ji salix û xeberên bajaran in ku em ji bo te dibêjin. Hin ji wan hene ku (heta îro jî şûnwarên wan) li ser piyan mane û hinek jî hene ku her wekî zadê dirûtî (çinandî), bêser û bêşûn in.

**101**- Me, li wan zilm nekir, belê wan bi xwe (bi kufra xwe) li xwe zilim kir. Çi dema fermana Xwedayê te (bi ezab) hat, ew ên ku ji bilî Xwedê Teala ew dihebandin, tiştek ji ser wan nedane paş û îbadetê wan jî ji zerarê pê ve tiştek li wan zêde nekir.

**102**- Ha wisa ezabê Xwedayê te xelkê bajaran digire dema ew zalim bin. Bêguman ezabê Xwedê dijwar û çetîn e.

Ev ayeta pîroz dide zanîn ku Xwedê bi çi awayî ew welatên ku xelkê wan zalim bû, bi ezabekî dijwar biriye helakê û her wiha dê hemû zaliman bibe nemanê. Di ayetê de ji bo hemû zaliman gefeke dijwar heye. Wekî ku Pêxember ferman kiriye: "Bêguman Xwedê ew qas muhletê dide kesê zalim. Paşê ku bi ser de digre ew hîç xelas nabe." Pêxember piştî vê hedîsa xwe ev ayeta ku borî heta bi dawiyê xwend.

**103**- Bêguman di van (qiseyan) de, ji bo wan ên ku ji ezabê axîretê ditirsin ders û îbret hene. Ew roj, rojeke wisa ye ku tê de hemû mexlûq, ji bo wê tên civandin û hemû (mexlûq) wê dibînin.

**104**- Me ew (roj) tenê ji bo temambûna demeke bijimar daye paş.

**105**- Dema ew roj bê, bêyî destûra Xwedê tu kes nikare bipeyive (û mehderiyê bike). Ew (xelkên ku li mehşerê ne) hin ji wan bedbext in, hin ji wan jî bextiyar in.

**106**- Herçî ew ên ku bedbext in, ew di nav êgir de ne, tê de ji bo wan nefesdayîn û nefesstandineke bikul û bikovan heye.

**107**- Ew ê her û her di êgir de bin; heta erd û asîman hebin (mexsed pê erd û asîmanê axretê ye), ji bilî ya Xwedayê te bivê. Bêguman Xwedayê te ya ku bivê wê dike.

**108**- Herçî ew ên ku bextewer in, vêca ew seraqetî di bihiştê de ne heta ku erd û asîman (ên axretê) hebin, ji bilî ya Xwedayê te bivê. Ev dayîneke wisa ye ku bêxelasî û bêqutbûn e.

**109**- (Resûlê min!) Nexwe, der barê perestina wan de nekeve gumanê. Ew a ku ew her diperêzin ew e ku bav û bapîrên wan berî niha diperestin. Bêguman em ê heqê wan (ji ezabê) bêkêmasî bidin wan.

**110**- Sond be, Me Tewrat da Mûsa, vêca tê de bi hev ketin (hinekan bawerî pê anî û hinekan jî ew mandel kir). Eger paşêxistina ezabdana wan (bo roja qiyametê) ji Xwedayê te nebûya, teqez dê di nav wan de hukim bihatina kirin. Bêguman ew (xwedankitêb û muşrik) di bara Quranê de gumandar in.

**111**- Bêguman Xwedayê te dê hemberê (berdêla) karên her yekî ji wan (bawermend û kafiran) bêkêmasî bide wan. Bêguman Xwedayê te ji ya ku ew dikin agahdar e.

**112**- Nexwe tu û digel te ew ên ku tobe kirin jî wekî ku li we ferman hatiye kirin xwe rast û durist bikin û ji endazê neborin. Bêguman Xwedê bîner e bi ya ku hûn dikin.

Li gorî ji sehabiyan hatiye ragihandin, di Qur'anê de ayeteke bi qasî vê zor û bi jan ji Pêxember re daneketiye. Pêxember (s) wisa ferman kiriye: "Sûreyê Hûd ez pîr kirim!" Lewra di vî sûretî de ji wî re hatibû gotin: "Wekî ku emir li te hatiye kirin xwe rast û durist bike!" Belê ev ne karekî hêsan bû. Xwedê ne li Pêxember bi tenê, digel wî emrê xwerastkirinê li bawermendan jî dike. Ha endîşeya ku ew lerizandiye jî ev e; gelo umeta wî dê vî emrî bîne cih yan na. Hemû mesele û metirsî ji vê bû.

**113**- (Gelî bawermendan!) Bi tu rengî meyla sitemkaran nekin, vêca (eger hûn bikin) agir dê we bihingêve. Ji bilî Xwedê Teala tu dost û piştevanên we tune ne. paşê arîkariya we jî dê neyê kirin.

٢٣٥ الجزء الثاني عشر

فَلَا تَكُ فِي مِرْيَةٍ مِمَّا يَعْبُدُ هٰؤُلَٓاءِ مَا يَعْبُدُونَ اِلَّا كَمَا
يَعْبُدُ اٰبَٓاؤُهُمْ مِنْ قَبْلُ وَاِنَّا لَمُوَفُّوهُمْ نَص۪يبَهُمْ غَيْرَ مَنْقُوصٍ
﴿١٠٩﴾ وَلَقَدْ اٰتَيْنَا مُوسَى الْكِتَابَ فَاخْتُلِفَ ف۪يهِ وَلَوْلَا كَلِمَةٌ
سَبَقَتْ مِنْ رَبِّكَ لَقُضِيَ بَيْنَهُمْ وَاِنَّهُمْ لَف۪ي شَكٍّ مِنْهُ مُر۪يبٍ
﴿١١٠﴾ وَاِنَّ كُلًّا لَمَّا لَيُوَفِّيَنَّهُمْ رَبُّكَ اَعْمَالَهُمْ اِنَّهُ بِمَا يَعْمَلُونَ
خَب۪يرٌ ﴿١١١﴾ فَاسْتَقِمْ كَمَا اُمِرْتَ وَمَنْ تَابَ مَعَكَ وَلَا تَطْغَوْا
اِنَّهُ بِمَا تَعْمَلُونَ بَص۪يرٌ ﴿١١٢﴾ وَلَا تَرْكَنُٓوا اِلَى الَّذ۪ينَ ظَلَمُوا
فَتَمَسَّكُمُ النَّارُ وَمَا لَكُمْ مِنْ دُونِ اللّٰهِ مِنْ اَوْلِيَٓاءَ ثُمَّ
لَا تُنْصَرُونَ ﴿١١٣﴾ وَاَقِمِ الصَّلٰوةَ طَرَفَيِ النَّهَارِ وَزُلَفًا مِنَ الَّيْلِ
اِنَّ الْحَسَنَاتِ يُذْهِبْنَ السَّيِّـَٔاتِ ذٰلِكَ ذِكْرٰى لِلذَّاكِر۪ينَ
﴿١١٤﴾ وَاصْبِرْ فَاِنَّ اللّٰهَ لَا يُض۪يعُ اَجْرَ الْمُحْسِن۪ينَ ﴿١١٥﴾ فَلَوْلَا
كَانَ مِنَ الْقُرُونِ مِنْ قَبْلِكُمْ اُولُوا بَقِيَّةٍ يَنْهَوْنَ عَنِ الْفَسَادِ
فِي الْاَرْضِ اِلَّا قَل۪يلًا مِمَّنْ اَنْجَيْنَا مِنْهُمْ وَاتَّبَعَ
الَّذ۪ينَ ظَلَمُوا مَٓا اُتْرِفُوا ف۪يهِ وَكَانُوا مُجْرِم۪ينَ ﴿١١٦﴾ وَمَا
كَانَ رَبُّكَ لِيُهْلِكَ الْقُرٰى بِظُلْمٍ وَاَهْلُهَا مُصْلِحُونَ ﴿١١٧﴾

**114**- Di her du rexên rojê de (spêde û êvarê), di saetên nêzî şevê de (mexreb û eşayê) nimêj bike, bêguman qencî gunehan dibin. Ev li bîrbiran şîreteke rind e.

**115**- Sebrê bikişîne, bêguman Xwedê Teala xelata qencîkarên rast û durist winda nake.

**116**- Bila di dewrên beriya we de zanayên xwedanbîr û bawer hebûna da ku li ser erdê xerabî bidana paş (û da ku me hemû bi ber ezab nexistibûna), lê belê ji hindik ên ku me (ew ji kufrê) reha kirin pê ve (kesî ew nekir). Ew ên sitemkar jî li dûv xweşiya xwe çûn û teqez ew gunehkar bûn.

**117**- Xwedayê te ne ew e ku bajaran bi neheqî ji holê rake û ku xelkê wan qencîkar bin.

وَلَوْ شَاءَ رَبُّكَ لَجَعَلَ النَّاسَ اُمَّةً وَاحِدَةً وَلَا يَزَالُونَ مُخْتَلِفِينَ ١١٨
اِلَّا مَنْ رَحِمَ رَبُّكَ وَلِذٰلِكَ خَلَقَهُمْ وَتَمَّتْ كَلِمَةُ رَبِّكَ لَاَمْلَئَنَّ جَهَنَّمَ
مِنَ الْجِنَّةِ وَالنَّاسِ اَجْمَعِينَ ١١٩ وَكُلًّا نَقُصُّ عَلَيْكَ مِنْ اَنْبَاءِ الرُّسُلِ مَا
نُثَبِّتُ بِهِ فُؤَادَكَ وَجَاءَكَ فِي هٰذِهِ الْحَقُّ وَمَوْعِظَةٌ وَذِكْرٰى لِلْمُؤْمِنِينَ
١٢٠ وَقُلْ لِلَّذِينَ لَا يُؤْمِنُونَ اعْمَلُوا عَلٰى مَكَانَتِكُمْ اِنَّا عَامِلُونَ ١٢١
وَانْتَظِرُوا اِنَّا مُنْتَظِرُونَ ١٢٢ وَلِلّٰهِ غَيْبُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَاِلَيْهِ يُرْجَعُ
الْاَمْرُ كُلُّهُ فَاعْبُدْهُ وَتَوَكَّلْ عَلَيْهِ وَمَا رَبُّكَ بِغَافِلٍ عَمَّا تَعْمَلُونَ ١٢٣




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

الٓرٰ تِلْكَ اٰيَاتُ الْكِتَابِ الْمُبِينِ ١ اِنَّا اَنْزَلْنَاهُ قُرْاٰنًا عَرَبِيًّا
لَعَلَّكُمْ تَعْقِلُونَ ٢ نَحْنُ نَقُصُّ عَلَيْكَ اَحْسَنَ الْقَصَصِ بِمَا
اَوْحَيْنَا اِلَيْكَ هٰذَا الْقُرْاٰنَ وَاِنْ كُنْتَ مِنْ قَبْلِهِ لَمِنَ الْغَافِلِينَ
٣ اِذْ قَالَ يُوسُفُ لِاَبِيهِ يَا اَبَتِ اِنِّي رَاَيْتُ اَحَدَ عَشَرَ
كَوْكَبًا وَالشَّمْسَ وَالْقَمَرَ رَاَيْتُهُمْ لِي سَاجِدِينَ ٤

قَالَ

**118**- Eger Xwedayê te bixwesta dê mirov tev (li ser yek dînî) bikirina yek umet, (belê Xwedê nexwest;) ew ê her di îxtilafê de bin.

**119**- Ji bilî ew ê ku Xwedayê te lê hatibe rehmê, ew cuda ye. Jixwe Xwedayê te da ku di îxtilafê de bin (hin bawerî bînin û hin neyînin) ew afirandine. Fermana Xwedayê te hate cih; bêguman ez ê dojehê ji mirov û cinan dagirim!

**120**- (Resûlê min!) Em ji hewadîsên pêxemberan her qiseya pêwîst ji te re dibêjin da ku em pê dilê te rihet bikin. Di van (qiseyan) de jî ji bo te heqî û ji bawermendan re jî şîret û bîranîn hene.

**121**- Ji wan ên ku bawerî nayînin re bibêje: Çi ji destên we bê bikin! Çi pêwîst be, em ê jî wê bikin!

**122**- Çavnêriyê (li encama karên xwe) bikin! Bêguman em jî dê çavnêriyê bikin.

**123**- Zanîna nependiya erd û asîmanan bes li cem Xwedê ye. Her kar û bar dê lê vegerin. Nexwe îbadetê wî bike û xwe bispêre Wî. Bêguman Xwedayê te ji kar û kiryarên ku hûn dikin, ne bêagah e.

## SÛREYÊ YÛSUF

Sûreyê Yûsuf 111 (sed û yanzdeh) ayet e. Ayeta 1ê, ya 2ê û ya 3ê li Medînê, yên din jî li Mekkê nazil bûne. Sûre ji ber ku behsa Yûsuf Pêxember dike, jê re "Sûreyê Yûsuf" hatiye gotin.

Xwedê di vî sûreyî de ji Pêxemberê xwe re, awayên cur be cur yên eziyet û jana ku Yûsuf ji birayên xwe dîtiye, bêbextîya ku di mala Ezîzê Misrê de lê hatiye kirin, ketina zîndanê û şela ku jinan li serê wî gerandine, radigihîne. Bi vî awayî dide zanîn ku piştî tengiyê ferehî û piştî reşiyê rewşen tê. Ev sûre, di bêje, îfade û daxwazên xwe de xwedî şêwazeke bêhempa ye, ragihandina wî ew qas lezîz û şêrîn e. Çawa ku xwîn di rayan de bi rehetî digere, qiseya wî jî wilo bi şad û şîranî di dilê mirov de digere. Her çi qas ev sûre li Mekkê hatiye jî uslûb û îfadeya wî pir nazik e û atmosfera şefqet, merhemet, dilnermî û diltenikiyê hildigire. Ji ber vê yekê Xalid kurê Me'dan wiha gotiye: "Sûreyê Yûsuf û Sûreyê Meryem, ehlê cennetê wan li cennetê dixwînin û pê kêfxweş dibin." Her wiha Eta jî gotiye: "Kîjan mirovê xemgîn "Sûreyê Yûsuf" bibihîze, her dê pê rehet bibe."

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovan

**1- Elîf, Lam, Ra.** Ev ayetên kitêba aşkera ne.

**2**- Me ev Quran bi zimanê erebî hinartiye da ku hûn têbigihîjin.

**3**- (Resûlê min!) Em bi peyamkirina vê Quranê bi bal te ve (serpêhatiyên miletên berê) bi spehîtirîn awayî ji bo te dibêjin. Hal ev e ku beriya ev (Quran ji bo te ) bê, bi rastî tu (ji van serpêhatiyan) ji bêagahan bûyî.

**4**- Dema Yûsuf ji bavê xwe (Yaqûb) re got: Bavê mino! Min (di xewna xwe de) dît ku yazdeh stêr, roj û heyv ji bo min di diçûn sicûdê.

قَالَ يَا بُنَيَّ لَا تَقْصُصْ رُءْيَاكَ عَلٰٓى اِخْوَتِكَ فَيَكٖيدُوا لَكَ
كَيْدًاۜ اِنَّ الشَّيْطَانَ لِلْاِنْسَانِ عَدُوٌّ مُبٖينٌ ﴿٥﴾ وَكَذٰلِكَ
يَجْتَبٖيكَ رَبُّكَ وَيُعَلِّمُكَ مِنْ تَأْوٖيلِ الْاَحَادٖيثِ وَيُتِمُّ نِعْمَتَهُ
عَلَيْكَ وَعَلٰٓى اٰلِ يَعْقُوبَ كَمَٓا اَتَمَّهَا عَلٰٓى اَبَوَيْكَ مِنْ قَبْلُ
اِبْرٰهٖيمَ وَاِسْحٰقَۜ اِنَّ رَبَّكَ عَلٖيمٌ حَكٖيمٌ ﴿٦﴾ لَقَدْ كَانَ
فٖي يُوسُفَ وَاِخْوَتِهٖٓ اٰيَاتٌ لِلسَّٓائِلٖينَ ﴿٧﴾ اِذْ قَالُوا لَيُوسُفُ
وَاَخُوهُ اَحَبُّ اِلٰٓى اَبٖينَا مِنَّا وَنَحْنُ عُصْبَةٌۜ اِنَّ اَبَانَا لَفٖي ضَلَالٍ
مُبٖينٍۚ ﴿٨﴾ اُقْتُلُوا يُوسُفَ اَوِ اطْرَحُوهُ اَرْضًا يَخْلُ لَكُمْ وَجْهُ
اَبٖيكُمْ وَتَكُونُوا مِنْ بَعْدِهٖ قَوْمًا صَالِحٖينَ ﴿٩﴾ قَالَ قَٓائِلٌ
مِنْهُمْ لَا تَقْتُلُوا يُوسُفَ وَاَلْقُوهُ فٖي غَيَابَتِ الْجُبِّ يَلْتَقِطْهُ
بَعْضُ السَّيَّارَةِ اِنْ كُنْتُمْ فَاعِلٖينَ ﴿١٠﴾ قَالُوا يَٓا اَبَانَا مَا لَكَ
لَا تَأْمَنَّا عَلٰى يُوسُفَ وَاِنَّا لَهُ لَنَاصِحُونَ ﴿١١﴾ اَرْسِلْهُ مَعَنَا غَدًا
يَرْتَعْ وَيَلْعَبْ وَاِنَّا لَهُ لَحَافِظُونَ ﴿١٢﴾ قَالَ اِنّٖي لَيَحْزُنُنٖٓي اَنْ تَذْهَبُوا
بِهٖ وَاَخَافُ اَنْ يَأْكُلَهُ الذِّئْبُ وَاَنْتُمْ عَنْهُ غَافِلُونَ ﴿١٣﴾
قَالُوا لَئِنْ اَكَلَهُ الذِّئْبُ وَنَحْنُ عُصْبَةٌ اِنَّٓا اِذًا لَخَاسِرُونَ ﴿١٤﴾

5- (Bavê jê re) Got: Kurikê mino! Zinhar xewna xwe ji birayên xwe re nebêje, vêca ew ê li te dek û fendan bikin! Bêguman şeytan ji bo mirovan dijminekî aşkera ye.

6- Her wiha Xwedayê te dê te (ji bo pêxemberiyê) hilbijêre, dê ravekirina xewnan hînî te bike û wekî ku hê berê qenciya xwe li ser kalên te Îbrahîm û Îshaq temam kirî, dê nîmetê xwe li ser te û li ser kinêsa (zuriyeta) Yaqûb jî temam bike. Bêguman Xwedayê te zana û karbinecih e.

7- Sond be, di (qiseya) Yûsuf û birayên wî de ji bo pirsyarkeran pir nîşan hene.

Li gorî rîwayetan, zanayên cihûyan ji giregirên muşrikên Mekkê re gotin: Ji Muhemmed bipirsin ka ji bo çi Îsraîlî çûne Misrê û binêrin dê çi bersivê bide? Wan jî ev yek ji Pêxember pirs kir, êdî ev sûreyê Yûsuf jê re nazil bû. Jixwe sûre jî van pirsên wan destnîşan dike.

8- Dema (birayên Yûsuf) gotin: Yûsuf û birayê xwe (Bunyamîn) li cem bavê me, ji me xwoşevîstir e. Hal ev e ku em desteke xurt û hêzdar in. Bavê me (bi vê yekê) di şaşiyeke aşkera de ye.

9- (Birayên wî di navbera xwe de gotin:) Yûsuf bikujin an jî wî biavêjin erdeke dûr (ku nikaribe bizivire), bavê we dê tenê ji bo we bimîne! Piştî wî hûn ê (digel bavê xwe û di jiyana xwe de) bibin civateke çak.

10- Yekî ji wan got: Yûsuf mekujin, eger hûn divên tiştekî pê bikin wî biavêjin binê bîrekê ku ji karwanan hin wî hildin (û bi xwe re bibin).

Li gorî fikr û dîtina Îbnîebbas; ji birayên ku ev pêşniyaz li birayên xwe kir navê wî Yehûda bû. Li gorî Qetade jî ew Rûbîl bû. Piştre wî birayî pêşniyara xwe bi birayên xwe da qebûlkirin û hatin cem bavê xwe.

11- (Piştî ku planên xwe girêdan hatin cem bavê xwe û) Gotin: Bavo! Ji bo çi li ser Yûsuf baweriya te bi me nayê, hal ev e ku em bi rastî jê re xêrxwaz in!

12- Sibehê wî digel me bişîne (çolê) da bixwe, vexwe û bileyîze, bêguman em ê wî biparêzin.

13- (Bavê wan) Got: Bi rastî ev min xemgîn dike ku hûn wî bi xwe re bibin. Ez ditirsim ku demekê haya we jê nemîne vêca gur wî bixwin.

14- (Jê re) Gotin: Sond be, eger gur wî bixwe û em jî (li hawirdora wî) desteke xurt û bihêz bin, naxwe hingê bi rastî me îflas kiriye.

فَلَمَّا ذَهَبُوا بِهٖ وَاَجْمَعُوا اَنْ يَجْعَلُوهُ فٖى غَيَابَتِ الْجُبِّ
وَاَوْحَيْنَا اِلَيْهِ لَتُنَبِّئَنَّهُمْ بِاَمْرِهِمْ هٰذَا وَهُمْ لَا يَشْعُرُونَ ﴿١٥﴾
وَجَٓاؤُ۫ اَبَاهُمْ عِشَٓاءً يَبْكُونَ ﴿١٦﴾ قَالُوا يَٓا اَبَانَٓا اِنَّا ذَهَبْنَا
نَسْتَبِقُ وَتَرَكْنَا يُوسُفَ عِنْدَ مَتَاعِنَا فَاَكَلَهُ الذِّئْبُ وَمَٓا
اَنْتَ بِمُؤْمِنٍ لَنَا وَلَوْ كُنَّا صَادِقٖينَ ﴿١٧﴾ وَجَٓاؤُ۫ عَلٰى قَمٖيصِهٖ
بِدَمٍ كَذِبٍ قَالَ بَلْ سَوَّلَتْ لَكُمْ اَنْفُسُكُمْ اَمْرًا فَصَبْرٌ
جَمٖيلٌ وَاللّٰهُ الْمُسْتَعَانُ عَلٰى مَا تَصِفُونَ ﴿١٨﴾ وَجَٓاءَتْ سَيَّارَةٌ
فَاَرْسَلُوا وَارِدَهُمْ فَاَدْلٰى دَلْوَهُ قَالَ يَا بُشْرٰى هٰذَا غُلَامٌ
وَاَسَرُّوهُ بِضَاعَةً وَاللّٰهُ عَلٖيمٌ بِمَا يَعْمَلُونَ ﴿١٩﴾ وَشَرَوْهُ بِثَمَنٍ
بَخْسٍ دَرَاهِمَ مَعْدُودَةٍ وَكَانُوا فٖيهِ مِنَ الزَّاهِدٖينَ ﴿٢٠﴾
وَقَالَ الَّذٖى اشْتَرٰيهُ مِنْ مِصْرَ لِامْرَاَتِهٖٓ اَكْرِمٖى مَثْوٰيهُ عَسٰٓى
اَنْ يَنْفَعَنَٓا اَوْ نَتَّخِذَهُ وَلَدًا وَكَذٰلِكَ مَكَّنَّا لِيُوسُفَ فِى
الْاَرْضِ وَلِنُعَلِّمَهُ مِنْ تَاْوٖيلِ الْاَحَادٖيثِ وَاللّٰهُ غَالِبٌ
عَلٰٓى اَمْرِهٖ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَ النَّاسِ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٢١﴾ وَلَمَّا بَلَغَ اَشُدَّهُٓ
اٰتَيْنَاهُ حُكْمًا وَعِلْمًا وَكَذٰلِكَ نَجْزِى الْمُحْسِنٖينَ ﴿٢٢﴾

وَرَاوَدَتْهُ

**15**- Dema wan ew bir, bi tifaq wan biryar da ku wî biavêjin binê bîrê. Me peyam jê re şand (û me jê re got:) Sond be ku tu dê vê kirina wan (rojekê) ji wan re bibêjî û (wê çaxê) ew nizanin (ku tu Yûsuf î).

**16**- Di dema eşayê de hatin cem bavê xwe, digirîyan.

**17**- Gotin: Bavo! Em çûbûn çolê me bi hev re pêşbazî dikir. Me Yûsuf jî li cem tiştên xwe hiştibû, (mixabin) guran ew xwar! Lê belê çiqas em rastgo bin jî tu ji me bawer nakî.

**18**- Wan xwîneke ji derewan li kirasê (gomlekê) Yûsuf dan û wan ew anî cem bavê xwe. (Yaqûb ji wan re) Got: Nexêr, ne wisan e, belkî nefsa we karekî xerab ji bo we xemilandiye. Vêca sebirkêşiya min dê sebireke rind be û li ser vê ya hûn dibêjin jî bes ez arîkariyê ji Xweda dixwazim.

Îbnîebbas gotiye: Birayên Yûsuf pezek serjêkir û serkirasê wî li xwîna wê dan. Çi gava serkiras ji bavê xwe re anîn, Yaqûb xebera tehl bihîst, kire fîxan û hawar û gomlekê wî ji wan xwest. Pê serçavên xwe maliya û got: Hûn derewan dikin heke gur Yûsuf xwaribûya dê serkirasê wî bidiranda. Li gorî rîwayeteke din, ji wan re wiha got: Ev gur çi qas birehm e ku kurê min xwariye û serkirasê wî nedirandiye!

**19**- Karwanek hat, vêca wan avkêşê xwe şand ser bîrê, wî jî dewla xwe berda bîrê (gava dewla xwe kişand û Yûsuf di dewlê de dît) Got: Wey li vê mizgîniyê, va ye lawikek! Wan Yûsuf wek pertalekî bazirganiyê veşart. Hal ev e ku Xwedê baş bi ya ku wan dikir dizane.

**20**- (Dema karwan gihîşt Misrê) Wan Yûsuf bi nirxekî hindik, bi çend dirheman firot û dilê wan li serê nebû (ji tirsa ku xwediyê wî dê li pey werin).

**21**- Ew ê ku Yûsuf li Misrê kirî (ku ew ezîzê Misrê bû) ji pîreka xwe re got: Qedrê wî bigire, rind lê binêre belkî feydeya wî li me bibe, yan jî em wî ji xwe re bi kurînî bigirin. Bi vî awayî me Yûsuf li erda (Misrê) niştecih kir da ku em wî hînî ravekirina xewnan bikin. Xwedê li ser her karê xwe desthilatdar e, lê belê pirên mirovan (vê) nizanin.

**22**- Dema Yûsuf (ji aqil û hêzê ve) giha kemala xwe, me pêxemberî û zanîn dayê û her bi vî rengî em qencîkarên rast û durist xelat dikin.

اَلَّذٖينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ طُوبٰى لَهُمْ وَحُسْنُ مَاٰبٍ ﴿٢٩﴾
كَذٰلِكَ اَرْسَلْنَاكَ فٖى اُمَّةٍ قَدْ خَلَتْ مِنْ قَبْلِهَٓا اُمَمٌ لِتَتْلُوَا
عَلَيْهِمُ الَّذٖٓى اَوْحَيْنَٓا اِلَيْكَ وَهُمْ يَكْفُرُونَ بِالرَّحْمٰنِ قُلْ هُوَ
رَبّٖى لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَ عَلَيْهِ تَوَكَّلْتُ وَاِلَيْهِ مَتَابِ ﴿٣٠﴾ وَلَوْ اَنَّ
قُرْاٰنًا سُيِّرَتْ بِهِ الْجِبَالُ اَوْ قُطِّعَتْ بِهِ الْاَرْضُ اَوْ كُلِّمَ بِهِ
الْمَوْتٰى بَلْ لِلّٰهِ الْاَمْرُ جَمٖيعًا اَفَلَمْ يَايْـَٔسِ الَّذٖينَ اٰمَنُٓوا اَنْ لَوْ
يَشَٓاءُ اللّٰهُ لَهَدَى النَّاسَ جَمٖيعًا وَلَا يَزَالُ الَّذٖينَ كَفَرُوا
تُصٖيبُهُمْ بِمَا صَنَعُوا قَارِعَةٌ اَوْ تَحُلُّ قَرٖيبًا مِنْ دَارِهِمْ حَتّٰى
يَاْتِىَ وَعْدُ اللّٰهِ اِنَّ اللّٰهَ لَا يُخْلِفُ الْمٖيعَادَ ﴿٣١﴾ وَلَقَدِ اسْتُهْزِئَ بِرُسُلٍ
مِنْ قَبْلِكَ فَاَمْلَيْتُ لِلَّذٖينَ كَفَرُوا ثُمَّ اَخَذْتُهُمْ فَكَيْفَ كَانَ
عِقَابِ ﴿٣٢﴾ اَفَمَنْ هُوَ قَٓائِمٌ عَلٰى كُلِّ نَفْسٍ بِمَا كَسَبَتْ وَجَعَلُوا لِلّٰهِ
شُرَكَٓاءَ قُلْ سَمُّوهُمْ اَمْ تُنَبِّؤُنَهُ بِمَا لَا يَعْلَمُ فِى الْاَرْضِ اَمْ بِظَاهِرٍ
مِنَ الْقَوْلِ بَلْ زُيِّنَ لِلَّذٖينَ كَفَرُوا مَكْرُهُمْ وَصُدُّوا عَنِ
السَّبٖيلِ وَمَنْ يُضْلِلِ اللّٰهُ فَمَا لَهُ مِنْ هَادٍ ﴿٣٣﴾ لَهُمْ عَذَابٌ فِى الْحَيٰوةِ
الدُّنْيَا وَلَعَذَابُ الْاٰخِرَةِ اَشَقُّ وَمَا لَهُمْ مِنَ اللّٰهِ مِنْ وَاقٍ ﴿٣٤﴾

مَثَلُ

**29-** Ew ên ku wan bawerî anî û karên qenc kirin, ji bo wan bextewarî û (bi bal bihiştê ve) lêvegera herî spehî heye.

**30-** (Ya Muhemmed!) Her wisa me tu jî ji umeteke wisa re şandî ku beriya wê gelek umet hatine û çûne, da ku ya me ji te re wehî kirî tu ji wan re bixwînî. Ew Xwedayê ku rehman e mandel dikin (bawerî pê nayînin). Bibêje: Ew Xwedayê min e, ji wî pê ve tu xweda nîn in, min tenê xwe spartiye wî û bes veger bi bal wî ve ye.

**31-** Eger Quraneke wisa ku çiya pê bihatina meşandin, yan pê erd bihatina qelişandin an jî pê bi miriyan re bihatina axaftin (ew Quran dîsa dê ev kitêb bûya û dîsa wan dê bawerî pê neaniya). Lê belê her kar û bar ê Xwedê Teala ye. Ma ew ên ku wan bawerî aniye hê jî nizanin ku eger Xwedê bixwesta dê mirov tev bianîna ser riya rast? Ew ên ku kafir bûne, bi sebunet kirinên wan, belayeke mezin ji nişka ve her dê bihingive wan an jî ew bela dê dakeve nêzîkî malên wan, hetanî ku civanê Xwedê (bo wan) tê. Bêguman Xwedê hîç civan şaş nake.

Li gorî hatiye ragihandin, rojekê Pêxember ji muşrikên Mekkê re îslam digot. muşrikekî ku navê wî Ebdullah kurê Umeyye el-Mexzûmî bû jê re got: Ev her du çiyayên Mekkê dor li me teng kirine, wan ji vir rake da ku cihê me fereh bibe. Di navbera her du çiyayan de bihêle ku çem biherikin, zeviyên çandiniyê veke, ji kalên me yên ku mirine filankes û bêvankes sax bike da ku ew bibêjin, tu rast dibêjî yan na? Vêca di bara vê gotina wan de ev ayeta ku borî, nazil bû.

**32-** (Ya Muhemmed!) Sond be (wekî ku tinaz li te tên kirin), tinaz li wan pêxemberên beriya te jî hatine kirin û min muhlet da wan ên ku kafir bûne. Paşê (bi ezêb) min ew hingaftin, vêca (xwezî te bidîta) ka ezabê min çawa bû!

**33-** Ma Xwedayê ku çavdêr be li ser a ku her kes dike (dibe mîna wan pûtên ku ne çavdêr in?) Ew ji Xwedê Teala re hevpişkan çêdikin. Bibêje: De ka navan li wan deynin (ew çi ne)? Ma li erdê ya ku Xweda nizane hûn jê re dibêjin? Yan jî hûn ji kelevajî ve dibêjin? Lê belê ji wan ên ku kafir bûne re fiêl û fendên wan hatine xemilandin û ji riya heq hatine bipaşdexistin. Xweda kê ji rê bixe êdî tu kes nîn e wî bîne riya rast.

**34-** Ji wan re di jiyana dinyayê de ezabek heye, ezabê axîretê jî hê jê dijwartir e û ji bo wan yekî ku wan ji (ezabê) Xwedê biparêze jî tune ye.

مثل الجنة التي وعد المتقون تجري من تحتها الانهار
اكلها دائم وظلها تلك عقبى الذين اتقوا وعقبى الكافرين
النار ٣٥ والذين آتيناهم الكتاب يفرحون بما انزل
اليك ومن الاحزاب من ينكر بعضه قل انما امرت ان
اعبد الله ولا اشرك به اليه ادعوا واليه مآب ٣٦ وكذلك
انزلناه حكما عربيا ولئن اتبعت اهواءهم بعد ما جاءك
من العلم ما لك من الله من ولي ولا واق ٣٧ ولقد ارسلنا
رسلا من قبلك وجعلنا لهم ازواجا وذرية وما كان لرسول
ان يأتي بآية الا باذن الله لكل اجل كتاب ٣٨ يمحوا الله
ما يشاء ويثبت وعنده ام الكتاب ٣٩ وان ما نرينك
بعض الذي نعدهم او نتوفينك فانما عليك البلاغ وعلينا
الحساب ٤٠ اولم يروا انا نأتي الارض ننقصها من اطرافها
والله يحكم لا معقب لحكمه وهو سريع الحساب ٤١
وقد مكر الذين من قبلهم فلله المكر جميعا يعلم ما
تكسب كل نفس وسيعلم الكفار لمن عقبى الدار ٤٢

**35**- Rewşa wê bihişta ku ji bo mutteqiyan peyman pê hatiye dayîn ev e: di bin (dar û koşkên) wê de rûbar diherikin, xwarin û siyên wê daîmî ne. Ev e, dumahîka yên ku xwe (bi nekirina gunehan) parastine û dumahîka kafiran jî agir e.

**36**- (Ya Muhemmed!) Ew ên ku me kitêb dane wan (ew cihû û filehên ku misliman bûne) bi Qurana ku ji te re hatiye hinartin dilxweş dibin (û pê bawerî tînin). Lê belê hin ji wan destekan hene ku hinekî jê mandel dikin. Bibêje: Bêguman ferman li min hatiye kirin ku ez bes îbadetê Xwedê bikim û tiştekî jê re nekim hevpişk. Ez bes (mirovan) vedixwînim bal dînê wî ve û vegera min bes bi bal wî ve ye.

**37**- Her wisa me Quran bi zimanê erebî hinart da ku tu (di navbera mirovan de) pê hukim bikî. Eger piştî vê zanîna ku ji te re hatî tu bidî pey hewesên wan, ha wê çaxê ji aliyê Xwedê Teala ve ne dostekî te ne jî nîgahdarekî te heye (ku te ji ezabê wî rizgar bike).

**38**- Sond be, Me beriya te jî pêxember şandine û me jin û zarok dane wan. Bêyî destûra Xwedê hîç ji pêxemberekî re derfet tune ye ku mucîzeyekê bîne. Ji her karekî re civanekî wî yê diyarkirî û kitêbek heye (ku tê nivîsîn).

**39**- Xwedê, ya ku bixwaze (ji kitêbê) dibe û ya ku bixwaze jî (tê de) dihêle û maka kitêban (Lewhul Mehfûz) li cem wî ye.

**40**- Eger em, hinekî ji wî ezabê ku me civan û peyman pê daye wan, bînin serê wan û nîşanî te bidin (jixwe ew cezayê wan e). Yan jî (hêj me nîşanî te nedaye) em te bimirînin bes wezîfeya te ragihandin e. Hesab û ceza (yê wan) jî karê me ye.

**41**- Erê ma ew (kafir) nabînin ku em ji hawirdor ve erdê (li wan) teng dikin (erdê wan bere bere dixin bin desthilatiya mislimanan)? Her Xwedê ye yê ku hukim dike, tu kes nikere hukmekî di ser hukmê wî re bike û ew hesabdîtina wî bilez e.

**42**- Bêguman kafirên beriya wan jî (li ber pêxemberên xwe) fen û fût gerandibûn. Hal ev e ku (pûçkirina) hemû fen û fûtan karê Xwedê ye. Ew dizane ka kî dê çi bike û di nêz de kafir jî dê bizanin ka (li axretê) dûmahîka qenc ya kê ye!



43- Ew ên ku kafir bûne ji te re dibêjin: Tu ne pêxember î. (Ji wan re) Bibêje: Di navbera min û we de (li ser pêxemberiya min) bi şahidî Xwedê Teala bes e û ew ê ku ji kitêbê xwedanzanîn in.

## SÛREYÊ ÎBRAHÎM

Sûreyê Îbrahîm 52 (pêncî û du) ayet e. Ayeta 28an û 29an li Medînê û yên din jî li Mekkê daketine. Ji ber ku di ayeta 35an û 41an de behsa bergerîna Îbrahîm kiriye jê re Sûreyê Îbrahîm hatiye gotin. Sûre, di nava xwe de mijara eqîdeyê digre ku ew jî bi bingeha wê ya herî mezin: "Baweriya bi Xwedê, pêxemberiyê, saxbûna piştî mirinê û bi padaş û sezayê" temsîl dibe. Sûre, hinekî bi dorferehî li ser doza pêxemberan radiweste, wezîfeya pêxember eşkere dike û maneya yekhedefiya peyxamên îlahî rave dike. Lewra hemû pêxember hatine şandin da ku avahiya îmanê lêkin, Xwedayê xelkê bi wan bidin naskirin û mirovatiyê ji tarîtiya kufrê derînin ronahiya îmanê. Naxwe, doza wan yek e, armanca wan yek e, çendan di nava wan de di hin hûrdekariyan de îxtîlaf hebe jî. Sûre, behsa pêxemberiya Mûsa (e) dike û dide zanîn ku wî ji gelê xwe xwestiye ku ew îbadet û spasiya Xwedê tenê bikin. Bi wan umetên ku borîne û pêxemberên xwe derewîn derxistine; wekî gelê Nûh, Ad û Semûd numûneyan eşkere dike. Piştre behsa mijara pêxemberan a di biwara gelên wan a di her wext û çaxî de dike. Dide zanîn ku têkoşîna pêxemberan li hemberî zalimên gelê wan, bi helaka wan sitemkaran encam bûye.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

1- **Elîf, Lam, Ra.** Ev (ayetên vî sûreyî) Quran e, me ji bo te hinart da ku tu mirovan bi destûra Xwedayê wan ji tarîtiyên (kufr û şirkê) derînî ber ronahiya îslamê; derînî ser riya Xwedayê serdest ê hêjayê pesindayinê ye.

2- Ew Xwedayê ku her jê re ye, ya li erd û asîmanan heye. Wax li kafiran be, ji ber ezabekî dijwar û giran!

3- Ew (kafir)ên ku jiyana dinyayê di ser ya axîretê re digirin, mirovan ji riya Xwedê didin paş û riya Xwedê xwar divên (da ku li gorî arzûyên wan be). Ha ew, di nav rêşaşiyeke dûr de ne.

4- Me her pêxemberek bes bi zimanê gelê wî şand da ku ji wan re (bi zimanê wan fermanên Xwedê) aşkera bike. Vêca Xwedê Teala kê bivê ji rê derdixe û kê jî bivê tîne riya rast. Ew (di kar û barê xwe de) Serdestê Karbinecih e.

5- Sond be, Me Mûsa bi mucîzeyên xwe hinart (ku ew neh mucîze bûn), me jê re got: Gelê xwe ji tarîtiyên kufr û şirkê derîne bi bal ronahiya baweriyê ve. Ew qewimînên ku di rojên Xwedê de rû dane di bîra wan bîne. Bêguman di vê (bibîranînê) de ji bo kesê zêde sebirkêş û spasdar, îbret û ders hene.

وَاِذْ قَالَ مُوسٰى لِقَوْمِهِ اذْكُرُوا نِعْمَةَ اللّٰهِ عَلَيْكُمْ اِذْ
اَنْجٰيكُمْ مِنْ اٰلِ فِرْعَوْنَ يَسُومُونَكُمْ سُٓوءَ الْعَذَابِ
وَيُذَبِّحُونَ اَبْنَٓاءَكُمْ وَيَسْتَحْيُونَ نِسَٓاءَكُمْ وَفٖى ذٰلِكُمْ
بَلَٓاءٌ مِنْ رَبِّكُمْ عَظٖيمٌ ﴿٦﴾ وَاِذْ تَاَذَّنَ رَبُّكُمْ لَئِنْ
شَكَرْتُمْ لَاَزٖيدَنَّكُمْ وَلَئِنْ كَفَرْتُمْ اِنَّ عَذَابٖى لَشَدٖيدٌ ﴿٧﴾
وَقَالَ مُوسٰٓى اِنْ تَكْفُرُٓوا اَنْتُمْ وَمَنْ فِى الْاَرْضِ جَمٖيعًا
فَاِنَّ اللّٰهَ لَغَنِىٌّ حَمٖيدٌ ﴿٨﴾ اَلَمْ يَاْتِكُمْ نَبَؤُا الَّذٖينَ مِنْ
قَبْلِكُمْ قَوْمِ نُوحٍ وَعَادٍ وَثَمُودَ وَالَّذٖينَ مِنْ بَعْدِهِمْ
لَا يَعْلَمُهُمْ اِلَّا اللّٰهُ جَٓاءَتْهُمْ رُسُلُهُمْ بِالْبَيِّنَاتِ فَرَدُّٓوا
اَيْدِيَهُمْ فٖٓى اَفْوَاهِهِمْ وَقَالُٓوا اِنَّا كَفَرْنَا بِمَٓا اُرْسِلْتُمْ بِهٖ
وَاِنَّا لَفٖى شَكٍّ مِمَّا تَدْعُونَنَٓا اِلَيْهِ مُرٖيبٍ ﴿٩﴾ قَالَتْ رُسُلُهُمْ
اَفِى اللّٰهِ شَكٌّ فَاطِرِ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ يَدْعُوكُمْ
لِيَغْفِرَ لَكُمْ مِنْ ذُنُوبِكُمْ وَيُؤَخِّرَكُمْ اِلٰٓى اَجَلٍ مُسَمًّى
قَالُٓوا اِنْ اَنْتُمْ اِلَّا بَشَرٌ مِثْلُنَا تُرٖيدُونَ اَنْ تَصُدُّونَا
عَمَّا كَانَ يَعْبُدُ اٰبَٓاؤُنَا فَاْتُونَا بِسُلْطَانٍ مُبٖينٍ ﴿١٠﴾

**6**- Wê dema Mûsa ji gelê xwe re got: Qenciya Xwedê ya li ser xwe di bîr bînin, wê dema ku Xwedê hûn ji Firewn û ehlê wî rizgar kirin. Wan, hûn li ezabê herî dijwar diçêrandin, kurên we dikuştin, keçên we (ji bo xizmetê) sax dihiştin û di vê yekê de ji nik Xwedayê we, ji bo we îmtihaneke mezin hebû.

**7**- Wê demê Xwedayê we ji we re ragihand; eger hûn şukra min bikin teqez ez ê (nîmetên xwe) li we zêde bikim û eger hûn înkara (nîmetên) min bikin, bi rastî ezabê min pir dijwar e.

**8**- Mûsa jî got: Eger hûn û yên ku li erdê hene tev kafir bibin jî (dîsa hûn ê nikaribin tu zerarekê bidin Xwedê). Vêca bêguman Xwedê dewlemend û hêjayê pesindayînê ye.

**9**- Erê ma xeberên wan (umet)ên beriya we ji bo we nehatine; gelê Nûh, gelê Ad û Semûd û wan (umet)ên ku li pey wan (hatin û çûne) ku ji Xwedê pê ve kes bi (hejmara) wan nizane. Pêxemberên wan ji wan re mucîze anîn û wan destên xwe ji kerban gez dikirin û digotin: Em bi wê ya ku hûn pê hatine şandin bawerî nayînin û em ji ya ku hûn me vedixwîninê gumandar in.

**10**- Pêxemberên wan (ji wan re) gotin: Erê ma qey di (heyîna) Ellah Teala de jî gumana we heye, digel ku ew Xaliqê erd û asîmanan e? Ew, we vedixwîne dînê heq da ku gunehên we bibexşîne û heya demeke nîşankirî we li jiyanê bihêle. Wan jî got: Hûn bes mirovinên wekî me ne. Hûn dixwazin berê me ji perestina van perestiyan bidine paş, ew ên ku bav û bapîrên me ew diperestin. Nexwe (eger rast e hûn pêxember in) de ka delîleke aşkera ji bo me bînin?!

قَالَتْ لَهُمْ رُسُلُهُمْ اِنْ نَحْنُ اِلَّا بَشَرٌ مِثْلُكُمْ وَلٰكِنَّ اللّٰهَ
يَمُنُّ عَلٰى مَنْ يَشَٓاءُ مِنْ عِبَادِهِ وَمَا كَانَ لَنَٓا اَنْ نَاْتِيَكُمْ
بِسُلْطَانٍ اِلَّا بِاِذْنِ اللّٰهِ وَعَلَى اللّٰهِ فَلْيَتَوَكَّلِ الْمُؤْمِنُونَ
﴿١١﴾ وَمَا لَنَٓا اَلَّا نَتَوَكَّلَ عَلَى اللّٰهِ وَقَدْ هَدٰينَا سُبُلَنَا
وَلَنَصْبِرَنَّ عَلٰى مَٓا اٰذَيْتُمُونَا وَعَلَى اللّٰهِ فَلْيَتَوَكَّلِ
الْمُتَوَكِّلُونَ ﴿١٢﴾ وَقَالَ الَّذِينَ كَفَرُوا لِرُسُلِهِمْ
لَنُخْرِجَنَّكُمْ مِنْ اَرْضِنَٓا اَوْ لَتَعُودُنَّ فِي مِلَّتِنَا فَاَوْحٰى
اِلَيْهِمْ رَبُّهُمْ لَنُهْلِكَنَّ الظَّالِمِينَ ﴿١٣﴾ وَلَنُسْكِنَنَّكُمُ
الْاَرْضَ مِنْ بَعْدِهِمْ ذٰلِكَ لِمَنْ خَافَ مَقَامِي وَخَافَ
وَعِيدِ ﴿١٤﴾ وَاسْتَفْتَحُوا وَخَابَ كُلُّ جَبَّارٍ عَنِيدٍ ﴿١٥﴾ مِنْ
وَرَٓائِهِ جَهَنَّمُ وَيُسْقٰى مِنْ مَٓاءٍ صَدِيدٍ ﴿١٦﴾ يَتَجَرَّعُهُ وَلَا يَكَادُ
يُسِيغُهُ وَيَاْتِيهِ الْمَوْتُ مِنْ كُلِّ مَكَانٍ وَمَا هُوَ بِمَيِّتٍ
وَمِنْ وَرَٓائِهِ عَذَابٌ غَلِيظٌ ﴿١٧﴾ مَثَلُ الَّذِينَ كَفَرُوا بِرَبِّهِمْ
اَعْمَالُهُمْ كَرَمَادٍ اشْتَدَّتْ بِهِ الرِّيحُ فِي يَوْمٍ عَاصِفٍ لَا
يَقْدِرُونَ مِمَّا كَسَبُوا عَلٰى شَيْءٍ ذٰلِكَ هُوَ الضَّلَالُ الْبَعِيدُ ﴿١٨﴾



**11**- Pêxemberên wan, ji wan re gotin: (Rast e), em bes mirovinên wekî we ne, lê belê Xwedê ji bendeyên xwe kê bivê pêxemberiyê dide wî. (Heçî delîlxwestina we ye, vêca) bi rastî bêyî destûra Xwedê em nikarin çi delîlekê ji we re bînin, naxwe bila bawermend her xwe bispêrin Xwedê Teala.

**12**- Ma çi li me qewimiye ku em xwe nespêrin Xwedê Teala, rewş ev e ku wî em li ser riya ku em wî pê binasin rasterê kirine. Sond be, li ser jana we dayî me teqez em ê sebrê bikêşin, vêca ew ên ku dixwazin pişta xwe qayîm bikin bila tenê bi Xwedê qayîm bikin.

**13**- Ew ên ku kafir bûne ji pêxemberên xwe re gotin: Bi sond, an em ê we ji welatê xwe derînin an jî hûn ê vegerin ser ola me! Vêca Xwedayê wan ji wan re peyam hinart, (û got): Em ê teqez sitemkaran ji holê rakin!

**14**- Em ê teqez piştî (helaka) wan we li warê wan bi cih bikin. Ha ev (serkeftin û cîwarbûn) bes ji bo wî kesî ye ku ji rawestina li hemberî min û ji ezabê roja qiyametê ditirse.

**15**- Pêxemberan serkeftin xwest, (Xwedê Teala jî ew da wan) û her zordarê rikdar jî xisar kir.

**16**- Li pêşiya wî (zordarê rikdar) dojeh heye û ew ji ava ji şij û xwînê tê avdan.

**17**- Hewl dide da ku wê daqurtîne lê belê ew nikare wê daqurtîne. Ji her cihî ve mirin tê ser wî, lê ew ê nemire. Piştî vê jî jê re ezabekî giran heye.

**18**- Rewşa qenciya wan ên ku bi Xwedayê xwe bawerî nayînin wekî rewşa xweliyekê ye ku di rojeke bahozî de bi dijwarî ba lê bide û tiştekî jê nehêle, (her wisa yên kafir) nikarin ji kar û kiryarên xwe sûdê wergirin. Ha ev, rêşaşiya dûr û kûr ew bi xwe ye.

Xwedê, di vê ayeta pîroz de, karên kafiran ên qenc dişibîne wê xweliya ku di rojeke bagerî de bi tundî ba lêbide û wê bike tozeke belawela. Yanî karên wan çi qasî rind be û çi qasî pir be jî li axretê tu feydê nade wan. Lewra Xwedê mirovan ji baweriya bi xwe û hemû pêxemberên ku şandine berpirs digire û piştî vê, xêr û xelatê dide wan. Naxwe mirovên kafir feyda qenciyên xwe li cîhanê dibînin û li axretê tu para wan a xêrê tune ye.

أَلَمْ تَرَ أَنَّ اللّٰهَ خَلَقَ السَّمٰوَاتِ وَالْأَرْضَ بِالْحَقِّ إِنْ يَشَأْ
يُذْهِبْكُمْ وَيَأْتِ بِخَلْقٍ جَدِيدٍ ﴿١٩﴾ وَمَا ذٰلِكَ عَلَى اللّٰهِ
بِعَزِيزٍ ﴿٢٠﴾ وَبَرَزُوا لِلّٰهِ جَمِيعًا فَقَالَ الضُّعَفٰٓؤُا لِلَّذِينَ
اسْتَكْبَرُوا إِنَّا كُنَّا لَكُمْ تَبَعًا فَهَلْ أَنْتُمْ مُغْنُونَ عَنَّا
مِنْ عَذَابِ اللّٰهِ مِنْ شَيْءٍ قَالُوا لَوْ هَدٰينَا اللّٰهُ لَهَدَيْنَاكُمْ
سَوَٓاءٌ عَلَيْنَٓا أَجَزِعْنَٓا أَمْ صَبَرْنَا مَا لَنَا مِنْ مَحِيصٍ ﴿٢١﴾
وَقَالَ الشَّيْطَانُ لَمَّا قُضِيَ الْأَمْرُ إِنَّ اللّٰهَ وَعَدَكُمْ وَعْدَ
الْحَقِّ وَوَعَدْتُكُمْ فَأَخْلَفْتُكُمْ وَمَا كَانَ لِيَ عَلَيْكُمْ
مِنْ سُلْطَانٍ إِلَّٓا أَنْ دَعَوْتُكُمْ فَاسْتَجَبْتُمْ لِي فَلَا تَلُومُونِي
وَلُومُٓوا أَنْفُسَكُمْ مَٓا أَنَا بِمُصْرِخِكُمْ وَمَٓا أَنْتُمْ بِمُصْرِخِيَّ
إِنِّي كَفَرْتُ بِمَٓا أَشْرَكْتُمُونِ مِنْ قَبْلُ إِنَّ الظَّالِمِينَ لَهُمْ
عَذَابٌ أَلِيمٌ ﴿٢٢﴾ وَأُدْخِلَ الَّذِينَ آمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ
جَنَّاتٍ تَجْرِي مِنْ تَحْتِهَا الْأَنْهَارُ خَالِدِينَ فِيهَا بِإِذْنِ رَبِّهِمْ
تَحِيَّتُهُمْ فِيهَا سَلَامٌ ﴿٢٣﴾ أَلَمْ تَرَ كَيْفَ ضَرَبَ اللّٰهُ مَثَلًا كَلِمَةً
طَيِّبَةً كَشَجَرَةٍ طَيِّبَةٍ أَصْلُهَا ثَابِتٌ وَفَرْعُهَا فِي السَّمَٓاءِ ﴿٢٤﴾

**19**- Erê ma te nezaniye ku Xwedê erd û asîman bi hikmet û zanayî afirandine?! (Gelî mirovan!) Eger Xweda, bivê dê we ji navê bibe (û di şûna we de) dê mexlûqekî nû bîne.

**20**- Ev, li ber Xweda ne zehmet e.

**21**- Hemû mexlûq (roja qiyametê, bi hemû kar û kiryarên xwe ve) dê derkevin pêşberî Xwedê. Vêca ew ên ku (di dinyayê de) bindest bûn, dê ji yên ku xwe mezin didêran re bibêjin: Bi rastî em dûvketiyên we bûn, erê ma vêga hûn dikarin hinekî ji ezabê Xwedê ji ser me bidin alî? Dê bibêjin: (Em çi bikin), eger Xwedê em anîbûna ser riya rast, me jî dê hûn bianiyana ser riya rast. Êdî ji me re wekhev e; çi em nalanalê bikin çi jî em xwe ragirin û bîna xwe fireh kin, ji bo me tu stare û ji ezabê Xwedê jî tu mefer tune ye.

**22**- Piştî ku her tişt bi dawî bû (hesabê mexlûqan hat dîtin, dojehî çûne dojehê û bihiştî jî çûne bihiştê) şeytan dibêje: Bêguman Xwedê bi duristî peyman dabû we, min jî peyman dabû we (ku hesab, bihişt û dojeh tune ne). Vêca min derew li we kir û li hemberî we tu zoreke min jî tune bû (ku bi zorê we bînim ser riya xwe), ji bilî ku min hûn gazî (înkara heqiyê) kirin, vêca we jî gaziya min pejirand. Naxwe gazindê ji min nekin, gazindê ji xwe bikin. Ne ez dikarim we (ji ezabê Xwedê) rizgar bikim ne jî hûn dikarin min rizgar bikin! Bi rastî berî niha dema we li dinyayê ez ji Xwedê re dikirim şerîk min qebûl nedikir. Bêguman heçî sitemkar in ji bo wan ezabekî jandar heye.

**23**- Ew ên ku bawerî anî û karên qenc kirin, bi destûra Xwedayê xwe, ew dê bikevin bihiştên ku di bin (dar û qesrên) wan re robar diherikin, her û her ew ê lê bimînin. Silavkirin û pêşwazîkirina wan (ji hev re) "bes silav" e!

Silav daxwaza wê rizgarbûna ji êş û derdan, ji zehmetî û tengasiyê û ji her texlîtên xerabiyê, êminiya ji tirs û endîşeyan e. Jixwe li cîhanê jî misliman vî duayê xêrê ji hev re dikin, xêr û xweşiya hev dixwazin.

**24**- Ma te nezaniye ka çawa Xwedê meseleyek anî û ronî kir; peyveke pak û paqij (ku peyva Laîlaheîllellah e) wekî dareke paqij e ku koka wê di erdê de binecih e û çiqlên wê li ber asîmana ye.

Xwedê, ev mîsal aniye ku kelîma tewhîdê "Laîlahe îllellah" e û da ku kelîma şirkê eşkere bike. Bi vî awayî kelîma îmanê şibandiye dara xweş û pak û kelîma şirkê jî şibandiye dara pîs. Îbnîebbas gotiye: "Peyva paqij 'Laîlaheillellah' e, dara paqij jî mirovê bawermend e."

تُؤْتٖٓى اُكُلَهَا كُلَّ حٖينٍ بِاِذْنِ رَبِّهَاۜ وَيَضْرِبُ اللّٰهُ الْاَمْثَالَ
لِلنَّاسِ لَعَلَّهُمْ يَتَذَكَّرُونَ ﴿٢٥﴾ وَمَثَلُ كَلِمَةٍ خَبٖيثَةٍ كَشَجَرَةٍ
خَبٖيثَةٍۨ اجْتُثَّتْ مِنْ فَوْقِ الْاَرْضِ مَا لَهَا مِنْ قَرَارٍ ﴿٢٦﴾
يُثَبِّتُ اللّٰهُ الَّذٖينَ اٰمَنُوا بِالْقَوْلِ الثَّابِتِ فِى الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا
وَفِى الْاٰخِرَةِۚ وَيُضِلُّ اللّٰهُ الظَّالِمٖينَ وَيَفْعَلُ اللّٰهُ
مَا يَشَٓاءُ ﴿٢٧﴾ اَلَمْ تَرَ اِلَى الَّذٖينَ بَدَّلُوا نِعْمَتَ اللّٰهِ كُفْرًا
وَاَحَلُّوا قَوْمَهُمْ دَارَ الْبَوَارِۙ ﴿٢٨﴾ جَهَنَّمَۚ يَصْلَوْنَهَاۜ وَبِئْسَ
الْقَرَارُ ﴿٢٩﴾ وَجَعَلُوا لِلّٰهِ اَنْدَادًا لِيُضِلُّوا عَنْ سَبٖيلِهٖۜ قُلْ
تَمَتَّعُوا فَاِنَّ مَصٖيرَكُمْ اِلَى النَّارِ ﴿٣٠﴾ قُلْ لِعِبَادِىَ الَّذٖينَ
اٰمَنُوا يُقٖيمُوا الصَّلٰوةَ وَيُنْفِقُوا مِمَّا رَزَقْنَاهُمْ سِرًّا وَعَلَانِيَةً
مِنْ قَبْلِ اَنْ يَأْتِىَ يَوْمٌ لَا بَيْعٌ فٖيهِ وَلَا خِلَالٌ ﴿٣١﴾ اَللّٰهُ الَّذٖى
خَلَقَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ وَاَنْزَلَ مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءً فَاَخْرَجَ بِهٖ
مِنَ الثَّمَرَاتِ رِزْقًا لَكُمْۚ وَسَخَّرَ لَكُمُ الْفُلْكَ لِتَجْرِىَ فِى
الْبَحْرِ بِاَمْرِهٖۚ وَسَخَّرَ لَكُمُ الْاَنْهَارَۚ ﴿٣٢﴾ وَسَخَّرَ لَكُمُ
الشَّمْسَ وَالْقَمَرَ دَٓائِبَيْنِۚ وَسَخَّرَ لَكُمُ الَّيْلَ وَالنَّهَارَۚ ﴿٣٣﴾

وَاٰتٰيكُمْ

25- Ew dar, bi destûra Xwedayê xwe her gav mêweyên xwe dide. Xwedê Teala mîsalan ji mirovan re tîne, ronî dike da ku îbretê bigirin (û bêne îmanê).

26- Mînaka peyva pîs (ya kufrê) wekî wê dara pîs e ku ji ser erdê hatiye hilkirin, jê re tu binecihî û mikûmî tun e.

27- Xwedê, bi peyva mikûm (a tewhîdê) wan ên ku bawerî anîn, li jiyana dinya û axîretê radigre û Xwedê sitemkaran jî ji rê dixe û Xwedê ya ku bixwaze dike.

28- Ma tu li wan ên ku li biwara kerema Xwedê (di şûna spasiyê de) nankoriyê dikin û di dawiyê de qewmê xwe di mala helakê werdikin, nabînî?!

29- Ew dê biçine dojehê û ew çi pîs wargeh e!

30- Wan ji Xwedê re hevpişk çêkirin, da ku (xelkê) ji riya wî bixin. (Ji wan re) Bibêje: bi pêxweşiyên xwe bijîn, bi rastî dûmahîka we her agir e.

31- Ji bendeyên min ew ên ku bawerî anîn re bibêje: Beriya rojek bê ku tê de ne danûstandin ne jî hevdostiyek heye, bila bi berdewamî û duristî nimêj bikin û ji wî rizqê ku me daye wan, bi dizî û aşkera (di riya Xwedê de) xerc bikin.

32- Ellah Teala ye, ew ê ku erd û asîman afirandin, ji ewran av aniye xwarê, vêca bi wê avê mêweyên rengereng bi rizqînî ji we re deranîn, ji bo we keştî sernerm kirin da ku bi destûra wî di deryayê de avê bijene (û barên giran bikêşe) û ji bo we robar jî berdest kirine.

33- Xwedê roj û heyv bi berdewamî xistine ber xizmeta we, şev û roj ji bo we misixur kirin (da ku hûn di şevê de îstîrahet bikin û di rojê de jî li rizqê xwe bigerin).

34- Xwedê ji her tiştê we jê xwestî, daye we. Eger hûn qenciyên Xwedê yên li ser xwe bijimêrin, hûn nikarin wan bijimêrin! Bêguman însan pir zalim e, zêde nankor e!

Xwedê wek numûne vî duayê Îbrahîm ê ku jê qebûl kiriye û hin ji nîmetên ku daye wî bi bîr tîne û wiha dibêje:

35- Wê demê Îbrahîm got: Xwedayê min! Vî bajarê ha (Mekkê) bike bajarekî ewle, min û zarokên min ji perestina pûtan biparêze!

36- Xwedayê min! Bi rastî van pûtan ji mirovan pir kes ji rê xistine. Êdî kî li pey min bê, ew ji (xelkên) min e. Kî jî li ber min rabe, vêca bêguman tu gunehveşêr î, dilovîn î.

37- Xwedayê me! Min hinek ji zarokên xwe li newaleke bêçandinî, li cem mala te ya birûmet/pîroz bi cih kirin. Xwedayê me, da ku bi berdewamî û duristî nimêj bikin, êdî tu jî meyla dilên hin mirovan bide aliyê wan û ji mêweyan wan bide rizqdan da ku ew şêkiriya te bikin.

Hikmeta ku Îbrahîm di duayê xwe yê di vê ayetê de Ke'be Mekke bi raveya diyar û naskirî: "Xwedayê me! Min hinek ji zarokên xwe li newaleke bêçandinî li cem mala te ya bi rûmet bi cih kirin" û di duayê xwe yê di Sûreyê Beqere ayeta 126ê de jî: "Xwedayê min! Vê dera hanê bike bajarekî aram û nişteciyên wê yên ku bawerî bi Xwedê û roja axretê anîne bi texlîtê fêkiyan xwedî bike." bi raveya nenaskirî û nediyar aniye, ev e: Duayê wî ya di Sûreyê Beqere de beriya avakirina Ke'bê bû. Loma ji Xwedê xwestiye ku wê bike bajarekî aram û ewle... Di vir de jî piştî avakirina Ke'bê dua kiriye. Loma ji Xwedê xwestiye ku ew ewle be, yanî bajarê asayîş û aramî û îstiqrarê be. Hikmeta ji hevveqetandina her du ayetan ev e.

٢٦١ الجزء الثالث عشر

وَاٰتٰيكُمْ مِنْ كُلِّ مَا سَاَلْتُمُوهُۜ وَاِنْ تَعُدُّوا نِعْمَتَ اللّٰهِ
لَا تُحْصُوهَاۜ اِنَّ الْاِنْسَانَ لَظَلُومٌ كَفَّارٌ ﴿٣٤﴾ وَاِذْ قَالَ
اِبْرٰهٖيمُ رَبِّ اجْعَلْ هٰذَا الْبَلَدَ اٰمِنًا وَاجْنُبْنٖى وَبَنِىَّ اَنْ نَعْبُدَ
الْاَصْنَامَۜ ﴿٣٥﴾ رَبِّ اِنَّهُنَّ اَضْلَلْنَ كَثٖيرًا مِنَ النَّاسِۚ فَمَنْ
تَبِعَنٖى فَاِنَّهُ مِنّٖىۚ وَمَنْ عَصَانٖى فَاِنَّكَ غَفُورٌ رَحٖيمٌ ﴿٣٦﴾ رَبَّنَا
اِنّٖى اَسْكَنْتُ مِنْ ذُرِّيَّتٖى بِوَادٍ غَيْرِ ذٖى زَرْعٍ عِنْدَ بَيْتِكَ
الْمُحَرَّمِۙ رَبَّنَا لِيُقٖيمُوا الصَّلٰوةَ فَاجْعَلْ اَفْـِٔدَةً مِنَ النَّاسِ
تَهْوٖى اِلَيْهِمْ وَارْزُقْهُمْ مِنَ الثَّمَرَاتِ لَعَلَّهُمْ يَشْكُرُونَ ﴿٣٧﴾
رَبَّنَا اِنَّكَ تَعْلَمُ مَا نُخْفٖى وَمَا نُعْلِنُۜ وَمَا يَخْفٰى عَلَى اللّٰهِ
مِنْ شَىْءٍ فِى الْاَرْضِ وَلَا فِى السَّمَاۤءِ ﴿٣٨﴾ اَلْحَمْدُ لِلّٰهِ الَّذٖى
وَهَبَ لٖى عَلَى الْكِبَرِ اِسْمٰعٖيلَ وَاِسْحٰقَۜ اِنَّ رَبّٖى لَسَمٖيعُ
الدُّعَاۤءِ ﴿٣٩﴾ رَبِّ اجْعَلْنٖى مُقٖيمَ الصَّلٰوةِ وَمِنْ ذُرِّيَّتٖىۗ رَبَّنَا
وَتَقَبَّلْ دُعَاۤءِ ﴿٤٠﴾ رَبَّنَا اغْفِرْ لٖى وَلِوَالِدَىَّ وَلِلْمُؤْمِنٖينَ يَوْمَ
يَقُومُ الْحِسَابُۚ ﴿٤١﴾ وَلَا تَحْسَبَنَّ اللّٰهَ غَافِلًا عَمَّا يَعْمَلُ
الظَّالِمُونَۜ اِنَّمَا يُؤَخِّرُهُمْ لِيَوْمٍ تَشْخَصُ فٖيهِ الْاَبْصَارُۙ ﴿٤٢﴾

38- Xwedayê me! Bêguman tu bi ya ku em veşêrin û ya ku em aşkera bikin jî dizanî. Bêguman ne li erdê ne jî li asîman tiştek li ber Xwedê veşartî namîne.

39- Pesn û spasî ji Xwedê re be, ew ê ku di kalîtiya min de Îsmaîl û Îshaq dane min! Bêguman Xwedayê min bergerê dibihîze (û qebûl dike).

40- Xwedayê min! Min û kinêsa min bike ji nimêjkaran Xwedayê me! Duayê min qebûl bike.

41- Xwedayê me! Di roja hesabdîtinê de, li gunehên min, li yên dê û bavên min û li yên mislimanan bibore!

42- Zinhar tu hizir neke ku Xwedê ji ya ku zalim dikin bêageh e! Bêguman ew bes (cezayê) wan dihêle rojekê ku tê de çav zeloq dibin.

مُهْطِعِينَ مُقْنِعِي رُؤُسِهِمْ لَا يَرْتَدُّ اِلَيْهِمْ طَرْفُهُمْ وَاَفْـِٔدَتُهُمْ
هَوَاءٌ ﴿٤٣﴾ وَاَنْذِرِ النَّاسَ يَوْمَ يَأْتِيهِمُ الْعَذَابُ فَيَقُولُ الَّذِينَ
ظَلَمُوا رَبَّنَا اَخِّرْنَا اِلَى اَجَلٍ قَرِيبٍ نُجِبْ دَعْوَتَكَ
وَنَتَّبِعِ الرُّسُلَ اَوَلَمْ تَكُونُوا اَقْسَمْتُمْ مِنْ قَبْلُ مَا لَكُمْ
مِنْ زَوَالٍ ﴿٤٤﴾ وَسَكَنْتُمْ فِي مَسَاكِنِ الَّذِينَ ظَلَمُوا
اَنْفُسَهُمْ وَتَبَيَّنَ لَكُمْ كَيْفَ فَعَلْنَا بِهِمْ وَضَرَبْنَا
لَكُمُ الْاَمْثَالَ ﴿٤٥﴾ وَقَدْ مَكَرُوا مَكْرَهُمْ وَعِنْدَ اللّٰهِ
مَكْرُهُمْ وَاِنْ كَانَ مَكْرُهُمْ لِتَزُولَ مِنْهُ الْجِبَالُ ﴿٤٦﴾ فَلَا
تَحْسَبَنَّ اللّٰهَ مُخْلِفَ وَعْدِهِ رُسُلَهُ اِنَّ اللّٰهَ عَزِيزٌ ذُو انْتِقَامٍ
﴿٤٧﴾ يَوْمَ تُبَدَّلُ الْاَرْضُ غَيْرَ الْاَرْضِ وَالسَّمٰوَاتُ
وَبَرَزُوا لِلّٰهِ الْوَاحِدِ الْقَهَّارِ ﴿٤٨﴾ وَتَرَى الْمُجْرِمِينَ يَوْمَئِذٍ
مُقَرَّنِينَ فِي الْاَصْفَادِ ﴿٤٩﴾ سَرَابِيلُهُمْ مِنْ قَطِرَانٍ وَتَغْشٰى
وُجُوهَهُمُ النَّارُ ﴿٥٠﴾ لِيَجْزِيَ اللّٰهُ كُلَّ نَفْسٍ مَا كَسَبَتْ اِنَّ اللّٰهَ
سَرِيعُ الْحِسَابِ ﴿٥١﴾ هٰذَا بَلَاغٌ لِلنَّاسِ وَلِيُنْذَرُوا بِهِ
وَلِيَعْلَمُوا اَنَّمَا هُوَ اِلٰهٌ وَاحِدٌ وَلِيَذَّكَّرَ اُولُوا الْاَلْبَابِ ﴿٥٢﴾

سُورَةُ

43- (Wê rojê) Ew bi lez in, serê wan berbijor in, çavên wan zîqmayî ne, li wan venagerin. (Ji tirsa ezabê) dilê wan jî vala ye.

44-Tu, mirovan ji wê roja ku ezab dê bê wan bitirsîne. Vêca ew ên ku zilim kirin dibêjin: Xwedayê me! Heya demeke nêzîk muhletê bide me, êdî em ê bersiva doza te bidin (û îmanê bînin) û em ê bidin pey pêxemberan. (Ji wan re tê gotin:) Erê ma qey berê (li dinyayê) we sond nexwaribû ku ji bo we zewal tune ye?

45- Hûn, li cihên wan ên ku li xwe zilim kirin (piştî ku me ew helak kirin) niştecih bûn, ji bo we jî xuya bû ka çawa me ezab bi serê wan de anîye. Me, ji bo we (di Quranê de) gelek mîsal anîn û aşkera kirin (belê we ji wan ders negirt).

46- Bi rastî wan (muşrikan) fetl û fendên xwe (li Pêxember û bawermendan) bi cih kirin, pûçkirina planên wan li cem Xwedê ye. Çendî ku ji ber xurtiya dek û dolabên wan, çiyan dikir ku ji cihê xwe hilbibin û hilweşin jî (lêbelê Xwedê, Pêxemberê xwe û kesên bawermend ji dek û dolabên wan parastin).

47- Nexwe, zinhar hizir meke ku Xwedê ji peymana ku daye pêxemberên xwe (ku dê bi ser bikeve), vegeriyaye! Bêguman Xwedê (di kar û barê xwe de) serdest û tolveker e.

48- Wê roja ku erd bi erdeke din, asîman jî bi hin asîmanên din bêne guherandin û (mirov tev) derkevin pêşberî Xweda, ew Xwedayê ku her yek û desthilatdar e.

49- Wê rojê tu dê bibînî ku gunehkar, dest û piyên wan di qeydan de şidandî ne.

50- Kirasên wan ji qetranê ne, agir bi ser û çavên wan ve bilind dibe û pê digire.

51- Da ku Xwedê cezayê her mirovekî ka çi kar û kiryar kiriye bidê û bêguman Xwedê (di heq û hesabdîtinê de) destsivik e.

52- Ev Quran, ji bo mirovan ragihandinek e da ku (mirov) pê bêne hişyarkirin û bizanin ku Ellah Teala Xwedayekî yek e û da ku xwedaneqil tam bifikrin û îbret bigirin.

## SÛREYÊ HICR

Sûreyê Hicr not û neh (99) ayet e. Ayeta 78an li Medînê, yên din jî li Mekkê daketine. Hicr navê cihekî ye ku dikeve newala navbera Şam û Medînê ku Semûd -Gelê Salih- li wê deverê bi cih bûbû. Ji ber ku ayeta 80an û ya 84an behsa gelê Hicrê kiriye, ji vî sûreyî re Sûreyê Hicr hatiye gotin

Sûre, armancên eqîdeya îslamê yên bingehîn: “Yekîtiya Xwedê, pêxemberî, saxbûna piştî mirinê û seza û padaşê” radigihîne. Her wiha encama nexêr a wan ên lê rast hatine ku di her dem û çaxê de li ber Xwedê rabûne û pêxemberên wî derewîn derxistine, bi bîr tîne. Loma sûre, bi gef û hişyarkirinê dest pê dike. Sûre, doza pêxemberan rave dike û helwesta bedbext û rêşaşan a li hemberî wan eşkere dike.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

**1- Elîf, Lam, Ra.** Ha ev ayet, ayetên kitêba pîroz û Qurana ronker in.

2- Ew ên kafir bûne (dema serkeftina mislimanan dibînin) dixwazin ku ew jî misliman bûna.

3- Dev ji wan berde, bila bixwin (û vexwin), pê xweş bibin, hêvî û umîd wan mijûl bike, vêca ew ê bizanin (ka encama wan bû çi).

4- Me kîjan war wêran kiribe her jê re civanekî pêzan hebûye (ku ew ê tê de helak bibe).

5- Hîç tu milet nakeve pêşiya ecelê xwe û ji wextê xwe nayê bipaşdexistin.

6- (Kafîran) Gotin: Hey ew ê ku jê re Quran hatiye hinartin! Bêguman tu dîn î!

7- (Dîsa gotin:) Bila te firîşte ji bo me bianîna (ku wan te rast bidêra) eger bi rastî tu ji rastgoyan î?

8- Em firîşteyan her bi heqî dişînin, (eger me firîşte bişandana) wê çaxê ji bo wan muhlet nedihate dayîn.

٢٦٣ الْجُزْءُ الرَّابِعَ عَشَرَ

سُورَةُ الْحِجْرِ مَكِّيَّةٌ وَهِىَ
تِسْعٌ وَتِسْعُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

الٓرٰ تِلْكَ اٰيَاتُ الْكِتَابِ وَقُرْاٰنٍ مُبِينٍ (١) رُبَمَا يَوَدُّ الَّذِينَ
كَفَرُوا لَوْ كَانُوا مُسْلِمِينَ (٢) ذَرْهُمْ يَاْكُلُوا وَيَتَمَتَّعُوا وَيُلْهِهِمُ
الْاَمَلُ فَسَوْفَ يَعْلَمُونَ (٣) وَمَٓا اَهْلَكْنَا مِنْ قَرْيَةٍ اِلَّا وَلَهَا
كِتَابٌ مَعْلُومٌ (٤) مَا تَسْبِقُ مِنْ اُمَّةٍ اَجَلَهَا وَمَا يَسْتَاْخِرُونَ
(٥) وَقَالُوا يَٓا اَيُّهَا الَّذِى نُزِّلَ عَلَيْهِ الذِّكْرُ اِنَّكَ لَمَجْنُونٌ (٦) لَوْ مَا
تَاْتِينَا بِالْمَلٰٓئِكَةِ اِنْ كُنْتَ مِنَ الصَّادِقِينَ (٧) مَا نُنَزِّلُ الْمَلٰٓئِكَةَ
اِلَّا بِالْحَقِّ وَمَا كَانُٓوا اِذًا مُنْظَرِينَ (٨) اِنَّا نَحْنُ نَزَّلْنَا الذِّكْرَ
وَاِنَّا لَهُ لَحَافِظُونَ (٩) وَلَقَدْ اَرْسَلْنَا مِنْ قَبْلِكَ فِى شِيَعِ الْاَوَّلِينَ
(١٠) وَمَا يَاْتِيهِمْ مِنْ رَسُولٍ اِلَّا كَانُوا بِهِ يَسْتَهْزِؤُنَ (١١) كَذٰلِكَ
نَسْلُكُهُ فِى قُلُوبِ الْمُجْرِمِينَ (١٢) لَا يُؤْمِنُونَ بِهِ وَقَدْ خَلَتْ سُنَّةُ
الْاَوَّلِينَ (١٣) وَلَوْ فَتَحْنَا عَلَيْهِمْ بَابًا مِنَ السَّمَٓاءِ فَظَلُّوا فِيهِ يَعْرُجُونَ
(١٤) لَقَالُٓوا اِنَّمَا سُكِّرَتْ اَبْصَارُنَا بَلْ نَحْنُ قَوْمٌ مَسْحُورُونَ (١٥)

9- Bêguman ê Quran hinartî her em in û teqez em bi xwe jî dê wê biparêzin.

10- Sond be, me pêxember ji miletên beriya te re jî şandin.

11- Çi dema pêxemberek ji wan re dihat, wan her tinazên xwe pê dikirin.

12- Ha wisa, em batilî dixin dilên gunehkaran.

13- Ew bi Quranê bawerî nayînin. Hal ev e ku adetê Xwedê der barê xelkên bihurî de (bi helaka kafiran û rizgarkirina mumînan) derbas bûye.

14- Eger em ji wan re ji asîman deriyekî vekin û ew tê re hilbin jorê jî (dîsa dê bawerî neyînin).

15- (Wê demê) dê bigotina, çavên me hatine girtin (ev a em dibînin ne rast e), belkî sêr li me hatiye kirin.

وَلَقَدْ جَعَلْنَا فِى السَّمَٓاءِ بُرُوجًا وَزَيَّنَّاهَا لِلنَّاظِرٖينَۙ ﴿١٦﴾
وَحَفِظْنَاهَا مِنْ كُلِّ شَيْطَانٍ رَجٖيمٍۙ ﴿١٧﴾ اِلَّا مَنِ اسْتَرَقَ السَّمْعَ
فَاَتْبَعَهُ شِهَابٌ مُبٖينٌ ﴿١٨﴾ وَالْاَرْضَ مَدَدْنَاهَا وَاَلْقَيْنَا فٖيهَا رَوَاسِيَ
وَاَنْبَتْنَا فٖيهَا مِنْ كُلِّ شَيْءٍ مَوْزُونٍ ﴿١٩﴾ وَجَعَلْنَا لَكُمْ فٖيهَا
مَعَايِشَ وَمَنْ لَسْتُمْ لَهُ بِرَازِقٖينَ ﴿٢٠﴾ وَاِنْ مِنْ شَيْءٍ اِلَّا عِنْدَنَا
خَزَٓائِنُهُ وَمَا نُنَزِّلُهُٓ اِلَّا بِقَدَرٍ مَعْلُومٍ ﴿٢١﴾ وَاَرْسَلْنَا الرِّيَاحَ لَوَاقِحَ
فَاَنْزَلْنَا مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءً فَاَسْقَيْنَاكُمُوهُۚ وَمَٓا اَنْتُمْ لَهُ بِخَازِنٖينَ
﴿٢٢﴾ وَاِنَّا لَنَحْنُ نُحْيٖي وَنُمٖيتُ وَنَحْنُ الْوَارِثُونَ ﴿٢٣﴾ وَلَقَدْ عَلِمْنَا
الْمُسْتَقْدِمٖينَ مِنْكُمْ وَلَقَدْ عَلِمْنَا الْمُسْتَاْخِرٖينَ ﴿٢٤﴾ وَاِنَّ رَبَّكَ
هُوَ يَحْشُرُهُمْۜ اِنَّهُ حَكٖيمٌ عَلٖيمٌ ﴿٢٥﴾ وَلَقَدْ خَلَقْنَا الْاِنْسَانَ
مِنْ صَلْصَالٍ مِنْ حَمَاٍ مَسْنُونٍۚ ﴿٢٦﴾ وَالْجَٓانَّ خَلَقْنَاهُ مِنْ قَبْلُ
مِنْ نَارِ السَّمُومِ ﴿٢٧﴾ وَاِذْ قَالَ رَبُّكَ لِلْمَلٰٓئِكَةِ اِنّٖى خَالِقٌ بَشَرًا
مِنْ صَلْصَالٍ مِنْ حَمَاٍ مَسْنُونٍ ﴿٢٨﴾ فَاِذَا سَوَّيْتُهُ وَنَفَخْتُ فٖيهِ
مِنْ رُوحٖى فَقَعُوا لَهُ سَاجِدٖينَ ﴿٢٩﴾ فَسَجَدَ الْمَلٰٓئِكَةُ كُلُّهُمْ
اَجْمَعُونَۙ ﴿٣٠﴾ اِلَّٓا اِبْلٖيسَۜ اَبٰٓى اَنْ يَكُونَ مَعَ السَّاجِدٖينَ ﴿٣١﴾

قَالَ

**16**- Sond be, me di asîman de (ji stêran re) hin rêgeh afirandine û me asîman ji bo temaşekeran xemilandiye.

**17**- Me asîman ji her şeytanê qewirandî parastiye.

**18**- Lê belê, ew ê ku bi dizîka guhê xwe bide xeberê û bireve ew cuda ye, êdî pêteke ronak bi pey wî jî dikeve (û wî disoje).

**19**- Me erd jî fireh kiriye û tê de çiyayên asê û saxlem bi cih kirine (da ku nelerize) û me di erdê de her tişt (li gorî hewcehiyê) bi pîvan deraniye.

**20**- Me ji bo we û ji bo wan ên ku hûn ne rizqdarên wan in di erdê de pêjînên (meîşeta) rengereng afirandin.

**21**- Herçî tiştê li kaînatê heye bes gencîneyên wê li cem me ne. Em wê her bi pîvaneke diyarkirî (bi qasî hewcehiyê) dadixin.

**22**- Me bayên ewrhilgir û avisker hinartin, vêca Me ji ewran avek anî xwarê û me bi wê hûn av dan û we bi xwe nikarîbû wê avê bixezinînin.

Ev ayeta pîroz dide zanîn ku ba wek alavê fitrîm (aviskerî) û bergirtina daran tê hinartin. Di ronahiya vê ayetê de ilmê îroyîn jî dide zanîn ku ba, di barîna baranê de rolekî mezin dileyîze; her wiha gava li giya jî dibare, tuxmê wan ê nêr diavêje ser ên mê û berê wan dide dagirtin.

**23**- Bêguman ê ku (ji tuneyî) sax dike û dimirîne her em bi xwe ne, paşê her em in mîratpêmahiyên hemû mexlûqan.

**24**- Sond be Em wan umetên ku beriya we hatin û çûn dizanin û em ên ku di pey we re bên jî dizanin.

**25**- Bêguman her Xwedayê te ye yê ku (roja qiyametê) wan li hev bicivîne. Bêguman Ew karbinecih e, zana ye.

**26**- Sond be, Me însan (Adem) ji hişkeheriyeke pehtî, ji heriyeke reşeguherî afirandiye.

**27**- Me cin jî hê berî (afirandina Adem) ji agirekî sincirî afirandibûn

**28**- Wê demê Xwedayê te ji firîşteyan re got, bêguman Ez ê ji heriyeke hişk û hola, ji heriyeke reşeguherî mirovekî (Adem) biafirînim.

**29**- Dema min ew tekûz kir (peykerê wî temam kir) û min ruh dayê, vêca di cih de hûn jê re herin sicûdê.

**30**- Firîşte tev bi hev re (ji Ademî re) çûn sicûdê.

**31**- Lê belê Îblîs bêemrî kir û nexwest ku bibe digel secdebiran.

قَالَ يَٓا اِبْل۪يسُ مَا لَكَ اَلَّا تَكُونَ مَعَ السَّاجِد۪ينَ ﴿٣٢﴾ قَالَ لَمْ
اَكُنْ لِاَسْجُدَ لِبَشَرٍ خَلَقْتَهُ مِنْ صَلْصَالٍ مِنْ حَمَاٍ مَسْنُونٍ
﴿٣٣﴾ قَالَ فَاخْرُجْ مِنْهَا فَاِنَّكَ رَج۪يمٌ ﴿٣٤﴾ وَاِنَّ عَلَيْكَ اللَّعْنَةَ
اِلٰى يَوْمِ الدّ۪ينِ ﴿٣٥﴾ قَالَ رَبِّ فَاَنْظِرْن۪ٓي اِلٰى يَوْمِ يُبْعَثُونَ ﴿٣٦﴾
قَالَ فَاِنَّكَ مِنَ الْمُنْظَر۪ينَ ﴿٣٧﴾ اِلٰى يَوْمِ الْوَقْتِ الْمَعْلُومِ ﴿٣٨﴾
قَالَ رَبِّ بِمَٓا اَغْوَيْتَن۪ي لَاُزَيِّنَنَّ لَهُمْ فِي الْاَرْضِ وَلَاُغْوِيَنَّهُمْ
اَجْمَع۪ينَ اِلَّا عِبَادَكَ مِنْهُمُ الْمُخْلَص۪ينَ ﴿٤٠﴾ قَالَ هٰذَا صِرَاطٌ
عَلَيَّ مُسْتَق۪يمٌ ﴿٤١﴾ اِنَّ عِبَاد۪ي لَيْسَ لَكَ عَلَيْهِمْ سُلْطَانٌ
اِلَّا مَنِ اتَّبَعَكَ مِنَ الْغَاو۪ينَ ﴿٤٢﴾ وَاِنَّ جَهَنَّمَ لَمَوْعِدُهُمْ
اَجْمَع۪ينَ ﴿٤٣﴾ لَهَا سَبْعَةُ اَبْوَابٍ لِكُلِّ بَابٍ مِنْهُمْ جُزْءٌ مَقْسُومٌ
﴿٤٤﴾ اِنَّ الْمُتَّق۪ينَ ف۪ي جَنَّاتٍ وَعُيُونٍ ﴿٤٥﴾ اُدْخُلُوهَا بِسَلَامٍ اٰمِن۪ينَ
﴿٤٦﴾ وَنَزَعْنَا مَا ف۪ي صُدُورِهِمْ مِنْ غِلٍّ اِخْوَانًا عَلٰى سُرُرٍ
مُتَقَابِل۪ينَ ﴿٤٧﴾ لَا يَمَسُّهُمْ ف۪يهَا نَصَبٌ وَمَا هُمْ مِنْهَا بِمُخْرَج۪ينَ
﴿٤٨﴾ نَبِّئْ عِبَاد۪ٓي اَنّ۪ٓي اَنَا الْغَفُورُ الرَّح۪يمُ ﴿٤٩﴾ وَاَنَّ عَذَاب۪ي هُوَ
الْعَذَابُ الْاَل۪يمُ ﴿٥٠﴾ وَنَبِّئْهُمْ عَنْ ضَيْفِ اِبْرٰه۪يمَ ﴿٥١﴾

32- (Xwedê jê re) Got: Hey Îblîs! Çi tiştî nehişt ku tu bibî digel secdebiran?

33- (Îblîs) Got: Ne layîqê min e ku ez ji mirovekî re biçim sicûdê ku te ew ji hişkeheriyeke reşeguherî afirandiye.

34- (Ji ber vê yekê Xwedê Teala jê re) Got: Nexwe ji wê derkeve, here! Êdî bi rastî tu (ji rehma min) hatî qewirandin!

35- Bêguman heya roja qiyametê dê her lanet li te bibare.

36- (Îblîs) Got: Xwedêyo! Nexwe, heya roja qiyamet û hesabdîtinê, xwe li min bigire (û min nemirîne).

37- Xwedê Teala jê re got: Baş e tu ji xwelêgirtiyan î...

38- Heyanî roja dema diyarkirî.

39- (Îblîsî) Got: Xwedêyo! Sond be, bi sedema ku te ez ji rê deranîme, ez ê jî li dinyayê ji mirovan re (gunehan) bixemilînim û ez ê teqez wan tevan ji riya rastiyê derînim!

40- Lê belê, evdên te yên bawermend ên dilpak ew cuda ne (ez nikarim wan ji rê derînim).

41- (Xwedê Teala) Got: Bi rastî ha ev riyeke rast û durist e, yê li ser biçe digihîje min.

42- Bêguman bendeyên min (yên muxlis) tu hêza te li ser wan nîn e (ku bi kotekî tu wan ji rê derînî). Lê belê ew jirêketiyên ku li pey te herin, cuda ne.

43- Bêguman dojeh civan û cihê we hemûyan e.

44- Ji dojehê re heft dergeh hene. Ji bo her dergehekî komeke diyarkirî heye.

45- Bêguman mutteqî, li nav bihiştê û li ser kaniyan in.

46- (Ji wan re dê bê gotin:) Bi selametî û ewlehî herin nav bihiştan!

47- Me kîna di sîngên wan de avêt; êdî (ji hev re) bûne bira, li ser textan li pêşberî hev in.

48- Li bihiştê tehb û westan wan nahingive û ew jê nayêne derxistin jî.

49- Ji bendeyên min re bibêje, teqez ez im gunehjêbir ê dilovîn.

50- Digel vê jî, teqez ezabê min ezabê herî dijwar e.

51- Ji wan re behsa mêvanên Îbrahîm bike.

إِذْ دَخَلُوا عَلَيْهِ فَقَالُوا سَلَامًا قَالَ اِنَّا مِنْكُمْ وَجِلُونَ ﴿٥٢﴾
قَالُوا لَا تَوْجَلْ اِنَّا نُبَشِّرُكَ بِغُلَامٍ عَلِيمٍ ﴿٥٣﴾ قَالَ اَبَشَّرْتُمُونِي
عَلٰى اَنْ مَسَّنِيَ الْكِبَرُ فَبِمَ تُبَشِّرُونَ ﴿٥٤﴾ قَالُوا بَشَّرْنَاكَ بِالْحَقِّ
فَلَا تَكُنْ مِنَ الْقَانِطِينَ ﴿٥٥﴾ قَالَ وَمَنْ يَقْنَطُ مِنْ رَحْمَةِ رَبِّهٖٓ
اِلَّا الضَّٓالُّونَ ﴿٥٦﴾ قَالَ فَمَا خَطْبُكُمْ اَيُّهَا الْمُرْسَلُونَ ﴿٥٧﴾ قَالُٓوا اِنَّٓا
اُرْسِلْنَٓا اِلٰى قَوْمٍ مُجْرِمِينَ ﴿٥٨﴾ اِلَّٓا اٰلَ لُوطٍ اِنَّا لَمُنَجُّوهُمْ
اَجْمَعِينَ ﴿٥٩﴾ اِلَّا امْرَاَتَهُ قَدَّرْنَٓا اِنَّهَا لَمِنَ الْغَابِرِينَ ﴿٦٠﴾ فَلَمَّا
جَٓاءَ اٰلَ لُوطٍ الْمُرْسَلُونَ ﴿٦١﴾ قَالَ اِنَّكُمْ قَوْمٌ مُنْكَرُونَ ﴿٦٢﴾
قَالُوا بَلْ جِئْنَاكَ بِمَا كَانُوا فِيهِ يَمْتَرُونَ ﴿٦٣﴾ وَاَتَيْنَاكَ
بِالْحَقِّ وَاِنَّا لَصَادِقُونَ ﴿٦٤﴾ فَاَسْرِ بِاَهْلِكَ بِقِطْعٍ مِنَ الَّيْلِ
وَاتَّبِعْ اَدْبَارَهُمْ وَلَا يَلْتَفِتْ مِنْكُمْ اَحَدٌ وَامْضُوا حَيْثُ
تُؤْمَرُونَ ﴿٦٥﴾ وَقَضَيْنَٓا اِلَيْهِ ذٰلِكَ الْاَمْرَ اَنَّ دَابِرَ هٰٓؤُلَٓاءِ
مَقْطُوعٌ مُصْبِحِينَ ﴿٦٦﴾ وَجَٓاءَ اَهْلُ الْمَدِينَةِ يَسْتَبْشِرُونَ
﴿٦٧﴾ قَالَ اِنَّ هٰٓؤُلَٓاءِ ضَيْفِي فَلَا تَفْضَحُونِ ﴿٦٨﴾ وَاتَّقُوا اللّٰهَ
وَلَا تُخْزُونِ ﴿٦٩﴾ قَالُٓوا اَوَلَمْ نَنْهَكَ عَنِ الْعَالَمِينَ ﴿٧٠﴾

قَالَ

**52**- Dema çûne cem Îbrahîm, gotin: "Silav li te be!" (Ji ber ku Îbrahîm ew nas nekirin, ji wan re) got: Bi rastî em ji we bifikar in!

**53**- Jê re gotin: Metirse! (Em qasidên Xwedayê te ne,) em mizgîna kurekî pir zana didin te.

**54**- (Îbrahîmî ji wan re) Got: Erê ma piştî vê pîrîtiyê hûn mizgîniyê didin min? Vêca hûn mizgîniya çi didin min?!

**55**- Jê re gotin: Me mizgîniya heq û rast da te, zinhar ji bêhêviyan nebe!

**56**- (Îbrahîm ji wan re) Got: Qey ji rêşaşan pê ve kî hêviya xwe ji rehma Xwedê dibire?

**57**- (Îbrahîm bi berdewamî ji wan re) Got: Gelî qasidan! Hûn ji bo çi hatine?

Çi gava Îbrahîm têgîhişt ku ew firîşte ne û Xwedê ew şandine, ji xwe re got, ev civata qerebalix ji bo mizgîniyeke tenê nayên. Naxwe divê ji bilî mizgînê erkeke wan a din hebe ku ew ji bo wê hatine. Ji loma ev pirsa ku borî dubare kir.

**58**- Jê re gotin: Bi rastî em ji bo (helaka) civateke gunehkar hatine şandin.

**59**- Lê belê malbata Lût ne tê de ye, bi rastî em ê Lût û malbata wî tevan rizgar bikin.

**60**- Lê belê pîreka wî cuda ye; me li serê hukim kir ku ew ji yên helakbûyî ye.

**61**- Gava qasid hatin cem malbata Lût.

**62**- (Lût ji wan re) Got: Bi rastî hûn civateke nenas in (min hûn nas nekirin).

**63**- Jê re gotin: Na, em hatine cem te bi wî ezabê ku miletê te di hatina wî de gumandar in.

**64**- Me, rastî ji te re aniye, bêguman em rastbêj in.

**65**- Jê re gotin: Di wextekî şevê de malbata xwe derîne rê, tu jî li dûv wan here. Zinhar bila ji we, tu kes li paş xwe nemêzêne! Herin wî cihê ku fermana we pê hatiye kirin.

**66**- Me ji Lût re wehî şand ku ew ên gunehkar di çaxê sibehê de wê ji binî ve bêne qutbirkirin.

**67**- Xelkê bajêr hatin û (ji bo kirina fiêlên kirêt) ji keyfxweşî mizgînî dane hev.

**68**- (Lût Pêxember ji wan rêşaşan re) Got: Evên ha, mêvanên min in. Zinhar min fehêtkar dernexin!.

**69**- Ji Xwedê bitirsin, min riswa mekin!

**70**- Jê re gotin: Erê ma qey me xwedîkirina mêvanan li te qedexe nekiribû?!

قَالَ هٰٓؤُلَٓاءِ بَنَاتٖٓي اِنْ كُنْتُمْ فَاعِلٖينَ ﴿٧١﴾ لَعَمْرُكَ اِنَّهُمْ لَفٖي سَكْرَتِهِمْ
يَعْمَهُونَ ﴿٧٢﴾ فَاَخَذَتْهُمُ الصَّيْحَةُ مُشْرِقٖينَ ﴿٧٣﴾ فَجَعَلْنَا عَالِيَهَا
سَافِلَهَا وَاَمْطَرْنَا عَلَيْهِمْ حِجَارَةً مِنْ سِجّٖيلٍ ﴿٧٤﴾ اِنَّ فٖي ذٰلِكَ
لَاٰيَاتٍ لِلْمُتَوَسِّمٖينَ ﴿٧٥﴾ وَاِنَّهَا لَبِسَبٖيلٍ مُقٖيمٍ ﴿٧٦﴾ اِنَّ فٖي ذٰلِكَ
لَاٰيَةً لِلْمُؤْمِنٖينَ ﴿٧٧﴾ وَاِنْ كَانَ اَصْحَابُ الْاَيْكَةِ لَظَالِمٖينَ ﴿٧٨﴾
فَانْتَقَمْنَا مِنْهُمْ وَاِنَّهُمَا لَبِاِمَامٍ مُبٖينٍ ﴿٧٩﴾ وَلَقَدْ كَذَّبَ اَصْحَابُ
الْحِجْرِ الْمُرْسَلٖينَ ﴿٨٠﴾ وَاٰتَيْنَاهُمْ اٰيَاتِنَا فَكَانُوا عَنْهَا مُعْرِضٖينَ
﴿٨١﴾ وَكَانُوا يَنْحِتُونَ مِنَ الْجِبَالِ بُيُوتًا اٰمِنٖينَ ﴿٨٢﴾ فَاَخَذَتْهُمُ
الصَّيْحَةُ مُصْبِحٖينَ ﴿٨٣﴾ فَمَٓا اَغْنٰى عَنْهُمْ مَا كَانُوا يَكْسِبُونَ ﴿٨٤﴾
وَمَا خَلَقْنَا السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ وَمَا بَيْنَهُمَٓا اِلَّا بِالْحَقِّ
وَاِنَّ السَّاعَةَ لَاٰتِيَةٌ فَاصْفَحِ الصَّفْحَ الْجَمٖيلَ ﴿٨٥﴾ اِنَّ رَبَّكَ هُوَ
الْخَلَّاقُ الْعَلٖيمُ ﴿٨٦﴾ وَلَقَدْ اٰتَيْنَاكَ سَبْعًا مِنَ الْمَثَانٖي وَالْقُرْاٰنَ
الْعَظٖيمَ ﴿٨٧﴾ لَا تَمُدَّنَّ عَيْنَيْكَ اِلٰى مَا مَتَّعْنَا بِهٖٓ اَزْوَاجًا مِنْهُمْ
وَلَا تَحْزَنْ عَلَيْهِمْ وَاخْفِضْ جَنَاحَكَ لِلْمُؤْمِنٖينَ ﴿٨٨﴾ وَقُلْ اِنّٖٓي
اَنَا النَّذٖيرُ الْمُبٖينُ ﴿٨٩﴾ كَمَٓا اَنْزَلْنَا عَلَى الْمُقْتَسِمٖينَ ﴿٩٠﴾

**71**- (Lût, ji wan re) Got: Eger hûn dixwazin va ne keçên min (li xwe mehr bikin).

**72**- (Ya Muhemmed!) Bi jiyana te bikim! Ew di nav serxweşiyê de bi sergêjane diçûn û dihatin.

**73**- Di çaxê hilhatina rojê de wê qîra dijwar ew hingaftin.

**74**- Êdî Me welatê wan serûbinî hev kir û me bi ser wan de kevirên ji heriya pehtî barandin.

**75**- Bêguman di vê rûdanê de ji bo yên ku bi nêrîna derswergirtinê bimêzînin, îbret hene.

**76**- Bêguman kavilên wî welatî li ser riyekê hê jî dimînin (qey hûn jê îbret nagirin?).

**77**- Bêguman di vê de ji bo bawermendan ders û nîşan hene.

**78**- Bi rastî xelkê (bajarê) Eyketê jî zalim bûn.

**79**- Lê belê me tol li wan jî vekir. Ev her du welat jî (Eyket û Hicr) li ser riyeke diyar in.

**80**- Sond be, xelkê Hicrê jî bi pêxemberan bawerî neanî.

**81**- Me mucîzeyên xwe dan wan, lê belê wan berê xwe ji wan vegerandin.

**82**- Wan ji bo xwe ji çiyan malên ewle dikolan û çêdikirin.

**83**- Di çaxê spêdeyê de wê qîra dijwar ew jî hingaftin.

**84**- Ew (xaniyên qaîm û kelehên asê) yên ku lêdikirin tu zerar ji ser wan neda alî.

**85**- Me erd û asîman, tiştên ku di nava wan de hene her bi heqî afirandin. Bêguman roja qiyametê teqez dê bê, vêca tu bi xweşikayî bi wan re derbas bike.

**86**- Bêguman Xwedayê te afirînerê her tiştî ye û her tiştî dizane.

**87**- (Ya Muhemmed!) Sond be, Me heft ayetên ku têne dubarekirin (sûreyê fatihê) û Qurana mezin dane te.

**88**- Zinhar, tu çavên xwe bernede wî malê ku ji bo feydeyeke demî me daye hin kesan, ji bo wan xemgîn nebe (ku wan bawerî neaniye) û ji bo bawermendan perên xwe nizm bike, xwe ji bo wan bişikîne.

**89**- (Ji wan re) Bibêje: Bêguman ez her hişyarkerekî ronker im (ez bi aşkerayî ji we re dibêjim û ji we venaşêrim, dê ezab bi ser we de bê).

**90**- Her wekî Me bi ser cihû û filehan de jî anî xwarê.



الَّذِينَ جَعَلُوا الْقُرْآنَ عِضِينَ ﴿٩١﴾ فَوَرَبِّكَ لَنَسْأَلَنَّهُمْ أَجْمَعِينَ
﴿٩٢﴾ عَمَّا كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿٩٣﴾ فَاصْدَعْ بِمَا تُؤْمَرُ وَأَعْرِضْ عَنِ
الْمُشْرِكِينَ ﴿٩٤﴾ إِنَّا كَفَيْنَاكَ الْمُسْتَهْزِئِينَ ﴿٩٥﴾ الَّذِينَ يَجْعَلُونَ
مَعَ اللَّهِ إِلَٰهًا آخَرَ فَسَوْفَ يَعْلَمُونَ ﴿٩٦﴾ وَلَقَدْ نَعْلَمُ أَنَّكَ
يَضِيقُ صَدْرُكَ بِمَا يَقُولُونَ ﴿٩٧﴾ فَسَبِّحْ بِحَمْدِ رَبِّكَ وَكُنْ
مِنَ السَّاجِدِينَ ﴿٩٨﴾ وَاعْبُدْ رَبَّكَ حَتَّىٰ يَأْتِيَكَ الْيَقِينُ ﴿٩٩﴾

سُورَةُ النَّحْلِ مَكِّيَّةٌ وَهِيَ
مِائَةٌ وَثَمَانٍ وَعِشْرُونَ آيَةً

بِسْمِ اللَّهِ الرَّحْمَٰنِ الرَّحِيمِ

أَتَىٰ أَمْرُ اللَّهِ فَلَا تَسْتَعْجِلُوهُ سُبْحَانَهُ وَتَعَالَىٰ عَمَّا يُشْرِكُونَ ﴿١﴾
يُنَزِّلُ الْمَلَائِكَةَ بِالرُّوحِ مِنْ أَمْرِهِ عَلَىٰ مَنْ يَشَاءُ مِنْ عِبَادِهِ أَنْ
أَنْذِرُوا أَنَّهُ لَا إِلَٰهَ إِلَّا أَنَا فَاتَّقُونِ ﴿٢﴾ خَلَقَ السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضَ
بِالْحَقِّ تَعَالَىٰ عَمَّا يُشْرِكُونَ ﴿٣﴾ خَلَقَ الْإِنْسَانَ مِنْ نُطْفَةٍ فَإِذَا
هُوَ خَصِيمٌ مُبِينٌ ﴿٤﴾ وَالْأَنْعَامَ خَلَقَهَا لَكُمْ فِيهَا دِفْءٌ وَمَنَافِعُ وَمِنْهَا
تَأْكُلُونَ ﴿٥﴾ وَلَكُمْ فِيهَا جَمَالٌ حِينَ تُرِيحُونَ وَحِينَ تَسْرَحُونَ ﴿٦﴾
وَتَحْمِلُ

**91**- Ew ên ku wan Quran kiriye beş bi beş (wan bi hinekî bawerî aniye û hinek jî înkar kirine).

**92**- (Ya Muhemmed!) Vêca bi Xwedayê te sond be, em ê tevî hemin ji wan bipirsin.

**93**-(Ji wan bipirsin) a ku wan dikir.

**94**- Vêca fermana ku li te hatî kirin aşkera bibêje û berê xwe ji muşrikan biguherîne!

**95**- Bêguman Me tu ji şerê yên ku tinaz li te dikirin, parastiye.

**96**- Ew (tinazker)ên ku digel Xwedê Teala ji bo xwe hin îlahên din jî girtine. Vêca dê bizanin (ka dûmahîka wan dê çawa bibe).

**97**- Sond be, Em dizanin a ku ew dibêjin sînga (bêhna) te teng dike.

**98**- Nexwe tu digel hemd û senayê, Xwedayê xwe pak bidêre û bibe ji nimêjkaran!

**99**- Heya tu sax bî îbadetê Xwedayê xwe bike!

## SÛREYÊ NEHL

Sûreyê Nehl 128 (sed û bîst û heşt) ayet e. Her sê ayetên wî yên dawiyê li Medînê û yên din jî li Mekkê hatine nazilkirin. Ji ber ku di ayeta 8ê de behsa mêşa hungivîn hatiye kirin ji vî sûreyî re Sûreyê Nehl hatiye gotin.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

**1**- Fermana Xwedê (qiyamet û peymana ezabdayînê) nêzîk e, vêca lezê li hatina wê mekin. Xwedê Teala ji wê şirka ku ew dikin, pak û bilind e.

**2**- Ellah Teala, ji bendeyên xwe kê bivê, bi vîna xwe, wehyê bi navgîna melayîketan jê re dişîne (Xwedê ji wan re dibêje: Evdên min) hişyar bikin ku bi rastî ji min pê ve tu Xweda nîn in, vêca bila ji min bitirsin.

**3**- Xwedê Teala, erd û asîman bi heqî (û ji bo hikmetekê) afirandine. Xwedê ji şirka ew dikin, dûr û bilind e.

**4**- Xwedê Teala, însan ji dilopeke av afirandiye, vêca tu dinêrî ku va ye (ew) ji Xwedayê xwe re dijminekî aşkera ye.

**5**- Xwedê Teala, terş (hêştir, dewar û pez) jî afirandin, di wan de germîtî û gelek feydeyên din jî ji bo we hene û hin ji wan jî hene ku hûn goştên wan dixwin.

**6**- Di wan de, dema êvarê wan tînin (hevşiyê wan) û dema spêdeyê jî wan dertînin (çêreyê) ji bo we xweşî û ciwanî heye.

**7**- Ev deve, barên we yên giran ji welatekî digihînin welatekî din ku (eger ew deve nebûna) bêyî zehmetiyeke zêde we nedikariya bigihînin wê derê. Bêguman Xwedayê we Xwedî şefqet e, dilovîn e.

**8**- Xwedê, hesp û qantir û ker jî afirandin da ku hûn li wan siwar bibin û da ku ew bibin xeml û xweşkahî ji bo we. Xwedê ya ku (îro) hûn pê nizanin jî dê biafirîne.

Ew navgînên ku hingê nebûn û vêga hatine peydakirin pir in wekî; trên, otomobîl, barkêş, balafir, fûze, moşek û keştiyên mezin. Bi rastî hin wasiteyên barhilgirtin û siwarbûnê peyda bûne ku xelkê wî zemanî ew nas nedikirin. Qur'an bi vê ayetê "Û yên ku hûn nizanin dê biafirîne" bêyî mandelkirin û qedexekirin, dil û mejiyan ji wan re amade dike. Ji bo ku mirov nebêjin: Bavê me, hesp, qantir û ker bi kar anîne, em, ji bilî wan tiştekî din nadin şixulandinê.

**9**- Bes Xwedê ye yê ku riya îmanê gerandiye riya rast ji bo encamê. Hin rê jî hene xwar in (ji riya rast averêbûyî ne). Eger Xwedê bixwesta dê hûn tev bianîna ser riya rast.

**10**- Ellah Teala ye, yê ku ji ewran av (baran, teyrok û berf) barandiye, hin jê ji bo we vexwarin e, hinek jî dar û şênkatî pê şîn dibin ku hûn tê de heywanên xwe diçêrînin.

**11**- Xwedê bi wê avê ji bo we çandinî, zeytûn, xurme, tirî û ji her texlîtên mêweyan (li erdê) hêşîn dike. Bêguman di vê rewşê de ji bo civateke ku tê bifikire nîşan hene.

٢٦٩ اَلْجُزْءُ الرَّابِعَ عَشَرَ

وَتَحْمِلُ اَثْقَالَكُمْ اِلٰى بَلَدٍ لَمْ تَكُونُوا بَالِغِيهِ اِلَّا
بِشِقِّ الْاَنْفُسِ اِنَّ رَبَّكُمْ لَرَؤُفٌ رَحِيمٌ ﴿٧﴾ وَالْخَيْلَ
وَالْبِغَالَ وَالْحَمِيرَ لِتَرْكَبُوهَا وَزِينَةً وَيَخْلُقُ مَا
لَا تَعْلَمُونَ ﴿٨﴾ وَعَلَى اللّٰهِ قَصْدُ السَّبِيلِ وَمِنْهَا جَٓائِرٌ وَلَوْ
شَٓاءَ لَهَدٰيكُمْ اَجْمَعِينَ ﴿٩﴾ هُوَ الَّذٖٓى اَنْزَلَ مِنَ السَّمَٓاءِ
مَٓاءً لَكُمْ مِنْهُ شَرَابٌ وَمِنْهُ شَجَرٌ فِيهِ تُسِيمُونَ ﴿١٠﴾
يُنْبِتُ لَكُمْ بِهِ الزَّرْعَ وَالزَّيْتُونَ وَالنَّخِيلَ وَالْاَعْنَابَ
وَمِنْ كُلِّ الثَّمَرَاتِ اِنَّ فٖى ذٰلِكَ لَاٰيَةً لِقَوْمٍ يَتَفَكَّرُونَ
﴿١١﴾ وَسَخَّرَ لَكُمُ الَّيْلَ وَالنَّهَارَ وَالشَّمْسَ وَالْقَمَرَ
وَالنُّجُومُ مُسَخَّرَاتٌ بِاَمْرِهٖ اِنَّ فٖى ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِقَوْمٍ
يَعْقِلُونَ ﴿١٢﴾ وَمَا ذَرَاَ لَكُمْ فِى الْاَرْضِ مُخْتَلِفًا اَلْوَانُهُ
اِنَّ فٖى ذٰلِكَ لَاٰيَةً لِقَوْمٍ يَذَّكَّرُونَ ﴿١٣﴾ وَهُوَ الَّذٖى
سَخَّرَ الْبَحْرَ لِتَاْكُلُوا مِنْهُ لَحْمًا طَرِيًّا وَتَسْتَخْرِجُوا
مِنْهُ حِلْيَةً تَلْبَسُونَهَا وَتَرَى الْفُلْكَ مَوَاخِرَ فٖيهِ
وَلِتَبْتَغُوا مِنْ فَضْلِهٖ وَلَعَلَّكُمْ تَشْكُرُونَ ﴿١٤﴾

**12**- Xwedê şev û ro, roj û heyv xistine ber xizmeta we. Stêr jî bi fermana Xwedê sernerm û misuxir in. Bêguman di van de, ji bo yên ku hişê xwe bixebitînin gelek nîşan hene (ku yekîtî û hêza Xwedê didine zanîn).

**13**- Ew tiştên ku Xwedê rengereng ji bo we li erdê çêkirine, bi rastî di wan de jî ji bo civateke şîretwergir nîşan hene.

**14**- Xwedê Teala ye, yê ku derya xistiye ber xizmeta we da ku hûn goştê ter û taze jê bixwin û ku hûn zînetan jê derînin ji bo hûn li xwe bikin. Tu keştiyên mezin dibînî ku li ser dikişin, da ku hûn bi wan (bi riya bazirganiyê) li kerema Xwedê bigerin û da ku hûn spasiya nîmetên wî bikin.

وَاَلْقٰى فِى الْاَرْضِ رَوَاسِىَ اَنْ تَم۪يدَ بِكُمْ وَاَنْهَارًا وَسُبُلًا
لَعَلَّكُمْ تَهْتَدُونَۙ ﴿١٥﴾ وَعَلَامَاتٍۜ وَبِالنَّجْمِ هُمْ يَهْتَدُونَ ﴿١٦﴾
اَفَمَنْ يَخْلُقُ كَمَنْ لَا يَخْلُقُۜ اَفَلَا تَذَكَّرُونَ ﴿١٧﴾ وَاِنْ
تَعُدُّوا نِعْمَةَ اللّٰهِ لَا تُحْصُوهَاۜ اِنَّ اللّٰهَ لَغَفُورٌ رَح۪يمٌ ﴿١٨﴾
وَاللّٰهُ يَعْلَمُ مَا تُسِرُّونَ وَمَا تُعْلِنُونَ ﴿١٩﴾ وَالَّذ۪ينَ يَدْعُونَ
مِنْ دُونِ اللّٰهِ لَا يَخْلُقُونَ شَيْـًٔا وَهُمْ يُخْلَقُونَۜ ﴿٢٠﴾ اَمْوَاتٌ
غَيْرُ اَحْيَٓاءٍۚ وَمَا يَشْعُرُونَۙ اَيَّانَ يُبْعَثُونَۚ ﴿٢١﴾ اِلٰهُكُمْ اِلٰهٌ
وَاحِدٌۚ فَالَّذ۪ينَ لَا يُؤْمِنُونَ بِالْاٰخِرَةِ قُلُوبُهُمْ مُنْكِرَةٌ وَهُمْ
مُسْتَكْبِرُونَ ﴿٢٢﴾ لَا جَرَمَ اَنَّ اللّٰهَ يَعْلَمُ مَا يُسِرُّونَ وَمَا
يُعْلِنُونَۜ اِنَّهُ لَا يُحِبُّ الْمُسْتَكْبِر۪ينَ ﴿٢٣﴾ وَاِذَا ق۪يلَ لَهُمْ مَاذَٓا
اَنْزَلَ رَبُّكُمْۙ قَالُٓوا اَسَاط۪يرُ الْاَوَّل۪ينَۙ ﴿٢٤﴾ لِيَحْمِلُٓوا اَوْزَارَهُمْ
كَامِلَةً يَوْمَ الْقِيٰمَةِۙ وَمِنْ اَوْزَارِ الَّذ۪ينَ يُضِلُّونَهُمْ بِغَيْرِ
عِلْمٍۜ اَلَا سَٓاءَ مَا يَزِرُونَۚ ﴿٢٥﴾ قَدْ مَكَرَ الَّذ۪ينَ مِنْ قَبْلِهِمْ
فَاَتَى اللّٰهُ بُنْيَانَهُمْ مِنَ الْقَوَاعِدِ فَخَرَّ عَلَيْهِمُ السَّقْفُ مِنْ
فَوْقِهِمْ وَاَتٰيهُمُ الْعَذَابُ مِنْ حَيْثُ لَا يَشْعُرُونَ ﴿٢٦﴾
ثُمَّ

**15**- Xwedê Teala di erdê de çiyayên asê û mikûm çikandine da ku we nehejîne û tê de (ji bo vexwarinê) çem û (ji bo rêveçûnê) rê danîne, hêvî heye ku hûn bi ser mebestên xwe ve bibin (û hûn xwe şaş nekin).

**16**- Xwedê ji bo we pir nîşanên din jî çêkirine û bi stêran jî ew bi ser riya xwe ve dibin.

**17**- Erê ma vêca ew ê ku diafirîne dibe wekî yên ku afirandinê nakin? Ma hê jî hûn nafikirin (ku hûn îmanê bînin û dev ji şirkê berdin)?

**18**- Eger hûn bixwazin nîmetên Xwedê Teala bijimêrin, hûn nikarin wan bijimêrin. Bêguman Xwedê Teala gunehjêbir e, dilovîn e.

**19**- Xwedê Teala ya ku hûn vedişêrin û ya ku hûn aşkera dikin jî dizane (nexwe xwe ji xezeba wî biparêzin).

**20**- Ew ên ku di şûna Xwedê Teala de wan dihebînin, ew nikarin tiştekî biafirînin; ew bi xwe jî hatine afirandin.

**21**- Ew (ên hûn wan dihebînin) mirî ne, ne zindî ne. Ew nizanin kengê dê bêne vejandin û şandin jî.

**22**- Xwedayê we (yê ku babetê îbadetê ye) Xwedayekî tek e. Vêca ew ên ku bawerî bi axîretê nayînin, dilê wan (yekîtiya wî) înkar dike, ew xwe mezin didêrin (û li xwe nanihin bawerî bînin).

**23**- Şik û guman nîn e, bi rastî Xwedê Teala bi ya ku ew vedişêrin û bi ya ku aşkera dikin jî dizane. Bêguman Ew qet ji xwedbînan hez nake.

**24**- Dema ji wan re tê gotin: Xwedayê we ji jor çi hinartiye? dibêjin: Çîrok û çîvanokên pêşiyan hinartine.

**25**- (Ew wisa dibêjin:) Da ku roja qiyametê gunehên xwe bi temamî û hin gunehên wan ên ku bêzanebûn ji rê xistine jî, hilgirin. Agahdar bin, a ku hildigirin çiqas pîs e!

**26**- Bêguman ew ên beriya wan jî (li ber pêxemberan) xefik vedabûn, vêca Xwedê Teala avahiya wan ji bin ve xera kir, êdî ban bi ser wan de hate xwarê û ezab ji dereke ku wan bîra wê nedibir, bi ser wan de hat.

ثُمَّ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ يُخْزِيهِمْ وَيَقُولُ اَيْنَ شُرَكَٓائِيَ الَّذِينَ كُنْتُمْ
تُشَٓاقُّونَ فِيهِمْ قَالَ الَّذِينَ اُوتُوا الْعِلْمَ اِنَّ الْخِزْيَ الْيَوْمَ وَالسُّوٓءَ
عَلَى الْكَافِرِينَ ﴿٢٧﴾ اَلَّذِينَ تَتَوَفّٰيهُمُ الْمَلٰٓئِكَةُ ظَالِمٖٓي اَنْفُسِهِمْ
فَاَلْقَوُا السَّلَمَ مَا كُنَّا نَعْمَلُ مِنْ سُوٓءٍ بَلٰٓى اِنَّ اللّٰهَ عَلِيمٌ بِمَا
كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿٢٨﴾ فَادْخُلُٓوا اَبْوَابَ جَهَنَّمَ خَالِدِينَ فِيهَا فَلَبِئْسَ
مَثْوَى الْمُتَكَبِّرِينَ ﴿٢٩﴾ وَقِيلَ لِلَّذِينَ اتَّقَوْا مَاذَٓا اَنْزَلَ رَبُّكُمْ
قَالُوا خَيْرًا لِلَّذِينَ اَحْسَنُوا فِي هٰذِهِ الدُّنْيَا حَسَنَةٌ وَلَدَارُ
الْاٰخِرَةِ خَيْرٌ وَلَنِعْمَ دَارُ الْمُتَّقِينَ ﴿٣٠﴾ جَنَّاتُ عَدْنٍ
يَدْخُلُونَهَا تَجْرِي مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ لَهُمْ فِيهَا مَا يَشَٓاؤُ۫نَ
كَذٰلِكَ يَجْزِي اللّٰهُ الْمُتَّقِينَ ﴿٣١﴾ اَلَّذِينَ تَتَوَفّٰيهُمُ الْمَلٰٓئِكَةُ
طَيِّبِينَ يَقُولُونَ سَلَامٌ عَلَيْكُمُ ادْخُلُوا الْجَنَّةَ بِمَا كُنْتُمْ
تَعْمَلُونَ ﴿٣٢﴾ هَلْ يَنْظُرُونَ اِلَّٓا اَنْ تَأْتِيَهُمُ الْمَلٰٓئِكَةُ اَوْ
يَأْتِيَ اَمْرُ رَبِّكَ كَذٰلِكَ فَعَلَ الَّذِينَ مِنْ قَبْلِهِمْ وَمَا ظَلَمَهُمُ
اللّٰهُ وَلٰكِنْ كَانُٓوا اَنْفُسَهُمْ يَظْلِمُونَ ﴿٣٣﴾ فَاَصَابَهُمْ
سَيِّـَٔاتُ مَا عَمِلُوا وَحَاقَ بِهِمْ مَا كَانُوا بِه۪ يَسْتَهْزِؤُ۫نَ ﴿٣٤﴾

**27**- Paşê roja qiyametê Xwedê Teala dê wan riswa bike û dê ji wan re bibêje: Ew hevpişkên ku we ji min re çêdikirin ka li ku ne, ew ên ku der barê wan de (bi pêxemberan re) we dijatî dikir? Ew ên ku ji wan re zanîn hatiye dayîn (di bersiva Xwedê de) dibêjin: Bêguman îro riswatî û ezab ji bo kafiran e.

**28**- Wan kafirên ku (bi girtina hevpişkan) li xwe zilim kir, dema melayîket ruhê wan distînin, vêca radestî ber fermana Xwedê dibin, dê bêjin: Me tu karê xerab nedikir. (Vêca melayîket ji wan re dibêjin:) Nexêr, ne wisan e. Teqez Xwedê Teala bi ya ku we dikir, dizane.

**29**- Nexwe, de heydê di dergehên dojehê re bikevinê û seraqetî tê de bimînin. Bi rastî cihê xwemezinkeran çiqas pîs e!

**30**- Dema ji teqwadaran re hat gotin: Xwedayê we çi hinartiye? Gotin: Qencî û başî. Ji bo yên ku qencî kirin li dinyayê xelateke spehî heye û xelata axretê ji bo wan hê çêtir e. Bi rastî axîret ji mutteqiyan re çi xweşmal e!

**31**- Teqwadar diçin bihiştên ‘Ednê (bihiştên lêmayînê) ku di bin (mêwedar û serayên) wan de çem diherikin, ji wan re di wan de tiştê ew dixwazin heye. Bi vî awayî Xwedê teqwadaran xelat dike.

**32**- Ew teqwadarên ku melayîket ruhê wan distînin ku ji pîsîtiya şirkê paqij in. (Melayîket di dema ruhsitandinê de ji wan re) Dibêjin: Silav li ser we be (hûn her di selametiyê de bin)! (Li axîretê jî ji wan re tê gotin:) Ji ber kar û kiryarên ku we (li dinyayê) kirine, de (kerem bikin) herin bihiştê.

**33**- Qey ji bilî ku melayîket (ji bo ruhkêşanê) bêne wan, an jî fermana Xwedayê te (bi ezab) ji wan re bê, ma ew muşrik çavnêriya çi dikin?! Wan umetên beriya wan jî welê kiribûn. Xwedê Teala li wan zilm nekiriye, lê belê wan bi xwe li xwe zilm dikir.

**34**- Vêca cezayê kar û kiryarên wan ew hingaftin û cezayê ya ku wan pê tinaz dikir bi ser wan de hat û dor li wan girt.

وَقَالَ الَّذِينَ اَشْرَكُوا لَوْ شَاءَ اللّٰهُ مَا عَبَدْنَا مِنْ دُونِهِ
مِنْ شَيْءٍ نَحْنُ وَلَا اٰبَاؤُنَا وَلَا حَرَّمْنَا مِنْ دُونِهِ مِنْ شَيْءٍ
كَذٰلِكَ فَعَلَ الَّذِينَ مِنْ قَبْلِهِمْ فَهَلْ عَلَى الرُّسُلِ اِلَّا الْبَلَاغُ
الْمُبِينُ ﴿٣٥﴾ وَلَقَدْ بَعَثْنَا فِي كُلِّ اُمَّةٍ رَسُولًا اَنِ اعْبُدُوا
اللّٰهَ وَاجْتَنِبُوا الطَّاغُوتَ فَمِنْهُمْ مَنْ هَدَى اللّٰهُ وَمِنْهُمْ مَنْ
حَقَّتْ عَلَيْهِ الضَّلَالَةُ فَسِيرُوا فِي الْاَرْضِ فَانْظُرُوا كَيْفَ
كَانَ عَاقِبَةُ الْمُكَذِّبِينَ ﴿٣٦﴾ اِنْ تَحْرِصْ عَلٰى هُدٰيهُمْ فَاِنَّ
اللّٰهَ لَا يَهْدِي مَنْ يُضِلُّ وَمَا لَهُمْ مِنْ نَاصِرِينَ ﴿٣٧﴾ وَاَقْسَمُوا
بِاللّٰهِ جَهْدَ اَيْمَانِهِمْ لَا يَبْعَثُ اللّٰهُ مَنْ يَمُوتُ بَلٰى وَعْدًا
عَلَيْهِ حَقًّا وَلٰكِنَّ اَكْثَرَ النَّاسِ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٣٨﴾ لِيُبَيِّنَ لَهُمُ
الَّذِي يَخْتَلِفُونَ فِيهِ وَلِيَعْلَمَ الَّذِينَ كَفَرُوا اَنَّهُمْ كَانُوا
كَاذِبِينَ ﴿٣٩﴾ اِنَّمَا قَوْلُنَا لِشَيْءٍ اِذَا اَرَدْنَاهُ اَنْ نَقُولَ لَهُ كُنْ
فَيَكُونُ ﴿٤٠﴾ وَالَّذِينَ هَاجَرُوا فِي اللّٰهِ مِنْ بَعْدِ مَا ظُلِمُوا
لَنُبَوِّئَنَّهُمْ فِي الدُّنْيَا حَسَنَةً وَلَاَجْرُ الْاٰخِرَةِ اَكْبَرُ لَوْ كَانُوا
يَعْلَمُونَ ﴿٤١﴾ اَلَّذِينَ صَبَرُوا وَعَلٰى رَبِّهِمْ يَتَوَكَّلُونَ ﴿٤٢﴾

وَمَا

**35**- Ew ên ku hevpişk ji bo Xwedê çekirin, gotin: Eger Xwedê bixwesta, ne me ne jî bav û kalên me, ji bilî Xwedê kes nedihebandin û me bêyî wî ji cem xwe tu tişt heram nedikir. Yên beriya wan jî mîna wan gotibûn. Erê ma li ser pêxemberan, ji ragihandineke aşkera pê ve çiyê din heye?

**36**- Sond be, Me ji bo her miletekî pêxemberek şand (da ku bibêjin:) bes Xwedê bihebînin û xwe ji taxûtî dûr bigirin. Vêca hin ji wan Xwedê ew rasterê kirin û hin ji wan jî ezab li ser wan misoger bû. (Gelî muşrikan!) De li ser erdê bigerin û bibînin ka encama derewînan çawan bûye!

Di ayeta pîroz de bêjeya "Taxût" derbas bû ku ew hem bi daxwaza pût e, hem bi mebesta sîstemên beşerî û dozên zordaran e. Ew bi maneya şeytan jî tê, hem jî bi nezanîn, bi bêhişî çûna li pey hin kes û rêçikên batil e.

**37**- (Ya Muhemmed!) Çiqas tu li ser rasterêkirina wan birijd bî jî, vêca bi rastî Xwedê kesê ku ji rê xistiye nayîne riya rast û ji bo wan tu arîkar jî nîn in.

**38**- Wan bi Xwedê sonda asê xwar, gotin: Kesê ku bimire Xwedê wî sax nake. Nexêr, ne wisan e (Xwedê dê wan sax bike). Ev, ji cem Xwedê soz û peymaneke heq e, lê belê pirên mirovan (vê) nizanin.

**39**- (Xwedê dê wan sax bike) da ku ya ew tê de (digel bawermendan) ketibûn îxtilafê, ji wan re aşkera bike û da ku ew ên kafir bûne bizanin ku bi rastî ew derewker bûn.

**40**- Dema em çêbûna tiştekî bixwazin, gotina me jê re tenê ev e: Çêbibe! Di cih de ew jî çêdibe.

**41**- Ew ên ku piştî neheqî li wan hatî kirin wan di riya (dînê) Xwedê de hicret kir; em ê wan li dinyayê rind bi cih bikin. Eger ew bizanin, xelata (wan a) axîretê hê mezintir e.

**42**- (Ew muhacirên di riya Xwedê de;) ew ên ku (li hemberî zorê) xwe ragirtine û ew ên ku xwe spartine Xwedayê xwe.

وَمَٓا اَرْسَلْنَا مِنْ قَبْلِكَ اِلَّا رِجَالًا نُوحٖٓى اِلَيْهِمْ فَسْـَٔلُٓوا اَهْلَ
الذِّكْرِ اِنْ كُنْتُمْ لَا تَعْلَمُونَۙ ﴿٤٣﴾ بِالْبَيِّنَاتِ وَالزُّبُرِۜ وَاَنْزَلْنَٓا
اِلَيْكَ الذِّكْرَ لِتُبَيِّنَ لِلنَّاسِ مَا نُزِّلَ اِلَيْهِمْ وَلَعَلَّهُمْ يَتَفَكَّرُونَ
﴿٤٤﴾ اَفَاَمِنَ الَّذٖينَ مَكَرُوا السَّيِّـَٔاتِ اَنْ يَخْسِفَ اللّٰهُ بِهِمُ الْاَرْضَ
اَوْ يَأْتِيَهُمُ الْعَذَابُ مِنْ حَيْثُ لَا يَشْعُرُونَۙ ﴿٤٥﴾ اَوْ يَأْخُذَهُمْ فٖى
تَقَلُّبِهِمْ فَمَا هُمْ بِمُعْجِزٖينَۙ ﴿٤٦﴾ اَوْ يَأْخُذَهُمْ عَلٰى تَخَوُّفٍۜ فَاِنَّ
رَبَّكُمْ لَرَؤُ۫فٌ رَحٖيمٌ ﴿٤٧﴾ اَوَلَمْ يَرَوْا اِلٰى مَا خَلَقَ اللّٰهُ مِنْ شَيْءٍ
يَتَفَيَّؤُ۬ا ظِلَالُهُ عَنِ الْيَمٖينِ وَالشَّمَٓائِلِ سُجَّدًا لِلّٰهِ وَهُمْ دَاخِرُونَ
﴿٤٨﴾ وَلِلّٰهِ يَسْجُدُ مَا فِى السَّمٰوَاتِ وَمَا فِى الْاَرْضِ مِنْ دَٓابَّةٍ
وَالْمَلٰٓئِكَةُ وَهُمْ لَا يَسْتَكْبِرُونَ ﴿٤٩﴾ يَخَافُونَ رَبَّهُمْ مِنْ فَوْقِهِمْ
وَيَفْعَلُونَ مَا يُؤْمَرُونَ ﴿٥٠﴾ وَقَالَ اللّٰهُ لَا تَتَّخِذُٓوا اِلٰهَيْنِ اثْنَيْنِ
اِنَّمَا هُوَ اِلٰهٌ وَاحِدٌ فَاِيَّايَ فَارْهَبُونِ ﴿٥١﴾ وَلَهُ مَا فِى السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضِ وَلَهُ الدّٖينُ وَاصِبًاۜ اَفَغَيْرَ اللّٰهِ تَتَّقُونَ ﴿٥٢﴾ وَمَا بِكُمْ
مِنْ نِعْمَةٍ فَمِنَ اللّٰهِ ثُمَّ اِذَا مَسَّكُمُ الضُّرُّ فَاِلَيْهِ تَجْـَٔرُونَ ﴿٥٣﴾ ثُمَّ
اِذَا كَشَفَ الضُّرَّ عَنْكُمْ اِذَا فَرٖيقٌ مِنْكُمْ بِرَبِّهِمْ يُشْرِكُونَ ﴿٥٤﴾

**43**- (Ya Muhemmed!) Me beriya te bi pêxemberî her zilam şandin (ne firîşte). Eger hûn nizanin ji ehlê zanînê bipirsin (ew ê ji bo we rastiyê bibêjin).

**44**- (Me pêxember bes) bi mucîze û pirtûkên pîroz şandin. (Ya Muhemmed!) Me ev Quran ji bo te hinart da ku tu ji bo mirovan a ku (ji helal û heramî) ji wan re hatî, aşkera bikî û ji bo ku ew bifikirin (û jê ders bigirin).

**45**- Erê ma ew ên ku dek û dolabên xerab (li pêşiya pêxember) gerandin, piştrast in ku Xwedê Teala wan di erdê de nabe xwarê, yan jî ji cihekî ku ew ne di ferqê de bin û bîrê nebin ezab bi ser wan de neyîne?

**46**- Yan jî (ma ew ewle ne ku) di çûn û vegera xwe de ezab dê nehingive wan? Teqez ew dê Xwedê neçar nehêlin da ku xwe ji ezabê wî xelas bikin.

**47**- Yan jî (ew bibawer in ku) Xwedê dê wan li ser tirsekê (bi ezab) negire? Bêguman Xwedayê we xwedî şefqet e, dilovîn e.

**48**- Erê ma ew kor in, nabînin çiqas tiştê Xwedê ew afirandî ka çawan sîbera wan ji rast û çep ve tê veguhastin, ev tev li hemberî Xwedê şikandî, lawaz û perşikestî ne.

**49**- Çiqas rêveher û melayîketên li erd û asîmanan, her ji Xwedê re ew diçin sicûdê û ew (bi nekirina îbadetê) xwe mezin nadêrin.

**50**- Ew ji Xwedayê xwe ditirsin ew ê ku di ser wan re ye û ya pê hatine fermankirin jî bi kar tînin.

**51**- Xwedê Teala got: Ji bo xwe du mabûdan negirin (ku hûn bi wan biperêzin). Bêguman Xwedayê we bes yek e û tek e. Nexwe (eger tirsa we ji tiştekî hebe) bes ji min bitirsin.

**52**- Çi tiştên li erd û asîmanan hene her ew milkên Xwedê ne, îbadet her dem ji bo wî ye. Erê ma piştî vê, ji bilî Xwedê hûn ê ji kê bitirsin û mafê kê biparêzin?

**53**- (Gelî mirovan!) Çi qenciyeke ku gihiştibe we ew tev ji Xwedê ne, paşê dema tengezariyek bi ser we de bê vêca hûn bi bal wî ve hawar dikin.

**54**- Paşê dema Xwedê ew tengasî ji ser we rakir, te dît ku civatekê ji we ji Xwedayê xwe re hevpişk çêkirin!

لِيَكْفُرُوا بِمَٓا اٰتَيْنَاهُمْۜ فَتَمَتَّعُواۜ فَسَوْفَ تَعْلَمُونَ ٥٥ وَيَجْعَلُونَ
لِمَا لَا يَعْلَمُونَ نَص۪يبًا مِمَّا رَزَقْنَاهُمْۜ تَاللّٰهِ لَتُسْـَٔلُنَّ عَمَّا كُنْتُمْ
تَفْتَرُونَ ٥٦ وَيَجْعَلُونَ لِلّٰهِ الْبَنَاتِ سُبْحَانَهُۙ وَلَهُمْ مَا يَشْتَهُونَ
٥٧ وَاِذَا بُشِّرَ اَحَدُهُمْ بِالْاُنْثٰى ظَلَّ وَجْهُهُ مُسْوَدًّا وَهُوَ كَظ۪يمٌۚ
٥٨ يَتَوَارٰى مِنَ الْقَوْمِ مِنْ سُٓوءِ مَا بُشِّرَ بِه۪ۜ اَيُمْسِكُهُ عَلٰى هُونٍ
اَمْ يَدُسُّهُ فِي التُّرَابِۜ اَلَا سَٓاءَ مَا يَحْكُمُونَ ٥٩ لِلَّذ۪ينَ لَا
يُؤْمِنُونَ بِالْاٰخِرَةِ مَثَلُ السَّوْءِۚ وَلِلّٰهِ الْمَثَلُ الْاَعْلٰىۜ وَهُوَ الْعَز۪يزُ
الْحَك۪يمُ ٦٠ وَلَوْ يُؤَاخِذُ اللّٰهُ النَّاسَ بِظُلْمِهِمْ مَا تَرَكَ عَلَيْهَا
مِنْ دَٓابَّةٍ وَلٰكِنْ يُؤَخِّرُهُمْ اِلٰٓى اَجَلٍ مُسَمًّىۚ فَاِذَا جَٓاءَ اَجَلُهُمْ
لَا يَسْتَأْخِرُونَ سَاعَةً وَلَا يَسْتَقْدِمُونَ ٦١ وَيَجْعَلُونَ لِلّٰهِ
مَا يَكْرَهُونَ وَتَصِفُ اَلْسِنَتُهُمُ الْكَذِبَ اَنَّ لَهُمُ الْحُسْنٰىۜ
لَا جَرَمَ اَنَّ لَهُمُ النَّارَ وَاَنَّهُمْ مُفْرَطُونَ ٦٢ تَاللّٰهِ لَقَدْ اَرْسَلْنَٓا
اِلٰٓى اُمَمٍ مِنْ قَبْلِكَ فَزَيَّنَ لَهُمُ الشَّيْطَانُ اَعْمَالَهُمْ فَهُوَ وَلِيُّهُمُ
الْيَوْمَ وَلَهُمْ عَذَابٌ اَل۪يمٌ ٦٣ وَمَٓا اَنْزَلْنَا عَلَيْكَ الْكِتَابَ اِلَّا
لِتُبَيِّنَ لَهُمُ الَّذِي اخْتَلَفُوا ف۪يهِۙ وَهُدًى وَرَحْمَةً لِقَوْمٍ يُؤْمِنُونَ ٦٤

وَاللّٰهُ

55- (Ew vê dikin) Da ku der barê nîmetên ku me daye wan de nankoriyê bikin!

Nexwe heya demeke din jî (bi nîmetên me) xweş bijîn. Teqez di nêzîk de hûn ê encama vê (nankoriya xwe) bizanin!

56- Ji rizqê ku me dayî wan, ji wan (pût)ên ku hebûna wan nizanin parekê vediqetînin. (Gelî muşrikan!) Sond bi navê Xwedê be, hûn ê ji wan derewên ku we dikir (roja qiyametê) teqez bêne pirsiyarkirin!

Di beriya îslamiyetê de ereban ji dexl û sewalên xwe parek vediqetandin û digotin: Ev para pûtên me ye, ev jî para Xwedê ye. Para ku ji bo Xwedê vediqetandin li mêvan û xizanan xerc dikirin û ya pûtan jî li merasîmên wan xerc dikirin.

57- Ew keçan ji bo Xwedê digerînin (dibêjin; milyaket keçên Xwedê ne, haşa!) Ellah Teala ji vê yekê pak û paqij e. Yê ku li xweşiya wan diçe jî (ku kur in) didin xwe.

58- Dema bi bûyina keçekê mizgîn ji yekî wan re tê, ji hêrs û qehran rûyê wî reş digere û (li hemberî wê) kîndar dibe.

59- Ji ber mizgîniya ne xweş xwe ji ber gelê xwe vedişêre (û difikire), gelo wê keçê şikestî û reben bihêle yan wê (bi saxî) di axê de veşêre? Hişyar bin, ev biryara wan çi pîs biryar e.

60- Ew ên ku bawerî bi axretê nayînin, salixên pîs ji bo wan in. Salixên herî bilind bes ji bo Xwedê Teala ne. Her ew e, yê (di kar û barê xwe de) desthilat, yê karbinecih.

61- Eger Xwedê Teala mirovan ji ber zilma ku dikin (pê re pê re) ceza bikira, li ser rûyê erdê yek rêveherek nedihişt. Lê belê heyanî demeke navlêkirî (cezayê) wan dide paş. Vêca dema civanê wan hat, ew saetekê nade paş û beriya civanê wan jî saetekê nade pêş.

62- Ew (muşrik) a ku ji bo xwe navên didin aliyê Xwedê Teala. Zimanê wan bi derew dibêje: Ku encama bixêr her ji bo wan e. Bêşik û şubhe her agir ji bo wan e û bêguman ew beriya her kesî di-çin dojehê û ew tê de têne jibîrkirin.

63- Sond bi Xwedê be, Me berî te ji gelek umetan re (pêxember) şandin, vêca şeytên karên wan ji bo wan xemilandin. Êdî îro (li dinyayê) şeytan dost û arîkarê wan e û (li axretê) ji bo wan ezabekî dijwar heye.

64- Me ev Quran ji bo te hinart da ku tu ji mirovan re tiştê ku tê de ketine îxtilafê aşkera bikî û da ku ji yên bawerî tînin re bibe rêber û rehmet.

وَاللّٰهُ اَنْزَلَ مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءً فَاَحْيَا بِهِ الْاَرْضَ بَعْدَ مَوْتِهَاۜ اِنَّ فٖى
ذٰلِكَ لَاٰيَةً لِقَوْمٍ يَسْمَعُونَ ﴿٦٥﴾ وَاِنَّ لَكُمْ فِى الْاَنْعَامِ لَعِبْرَةًۜ نُسْقٖيكُمْ
مِمَّا فٖى بُطُونِهٖ مِنْ بَيْنِ فَرْثٍ وَدَمٍ لَبَنًا خَالِصًا سَٓائِغًا لِلشَّارِبٖينَ
﴿٦٦﴾ وَمِنْ ثَمَرَاتِ النَّخٖيلِ وَالْاَعْنَابِ تَتَّخِذُونَ مِنْهُ سَكَرًا وَرِزْقًا
حَسَنًاۜ اِنَّ فٖى ذٰلِكَ لَاٰيَةً لِقَوْمٍ يَعْقِلُونَ ﴿٦٧﴾ وَاَوْحٰى رَبُّكَ اِلَى النَّحْلِ
اَنِ اتَّخِذٖى مِنَ الْجِبَالِ بُيُوتًا وَمِنَ الشَّجَرِ وَمِمَّا يَعْرِشُونَ ﴿٦٨﴾
ثُمَّ كُلٖى مِنْ كُلِّ الثَّمَرَاتِ فَاسْلُكٖى سُبُلَ رَبِّكِ ذُلُلًاۜ يَخْرُجُ
مِنْ بُطُونِهَا شَرَابٌ مُخْتَلِفٌ اَلْوَانُهُ فٖيهِ شِفَٓاءٌ لِلنَّاسِۜ اِنَّ فٖى ذٰلِكَ
لَاٰيَةً لِقَوْمٍ يَتَفَكَّرُونَ ﴿٦٩﴾ وَاللّٰهُ خَلَقَكُمْ ثُمَّ يَتَوَفّٰيكُمْ وَمِنْكُمْ
مَنْ يُرَدُّ اِلٰٓى اَرْذَلِ الْعُمُرِ لِكَيْ لَا يَعْلَمَ بَعْدَ عِلْمٍ شَيْـًٔاۜ اِنَّ اللّٰهَ
عَلٖيمٌ قَدٖيرٌ ﴿٧٠﴾ وَاللّٰهُ فَضَّلَ بَعْضَكُمْ عَلٰى بَعْضٍ فِى الرِّزْقِ فَمَا
الَّذٖينَ فُضِّلُوا بِرَٓادّٖى رِزْقِهِمْ عَلٰى مَا مَلَكَتْ اَيْمَانُهُمْ فَهُمْ فٖيهِ
سَوَٓاءٌۜ اَفَبِنِعْمَةِ اللّٰهِ يَجْحَدُونَ ﴿٧١﴾ وَاللّٰهُ جَعَلَ لَكُمْ مِنْ اَنْفُسِكُمْ
اَزْوَاجًا وَجَعَلَ لَكُمْ مِنْ اَزْوَاجِكُمْ بَنٖينَ وَحَفَدَةً وَرَزَقَكُمْ مِنَ
الطَّيِّبَاتِۜ اَفَبِالْبَاطِلِ يُؤْمِنُونَ وَبِنِعْمَتِ اللّٰهِ هُمْ يَكْفُرُونَ ﴿٧٢﴾

**65**- Xwedê Teala ji ewran baranek barand, vêca erd piştî ku hişkemirî bû pê sax (û hêşîn) kir. Bêguman di vê de ji bo civateke ku ji dil û can guhdarî bike nîşan hene (ku Xwedê eynî wisan mirovên mirî dê dîsa vejîne).

**66**- Bêguman ji bo we di terşan (deve, dewar û pêz) de jî îbret û ders hene ku Em şîrekî safî û parzûnkirî bi we didin vexwarin ku ew şîr di wan terşan de ji navbera rêx û xwînê dertê holê ku ew di gewriya yê vedixwin re bi hesanî diçe xwarê.

Birastî mirovekî bi hiş û eqilmend heke bihizire ku ev şîrê spî û safî ji neqeba rîx û mişkul û xwînê dertê û digel vê jî tama wî û rengê wî xera nabe û bêhna yekî ji wan jê nayê, misoger dê ji xaliqê mezin re teslîm bibe û îmanê bîne.

**67**- Hûn ji fêkiyên darxurme û ji tirîyê rezan şeraba serxweşker û rizqekî pak û spehî werdigrin. Bêguman di vê de jî ji bo civateke ku bifikire nîşan hene (ku qudreta Xwedê Teala dide zanîn).

**68**- Xwedayê te sirûş (û îlham) da mêşa hungivîn (û jê re got): Ji xwe re ji çiyan, ji daran û kewarên ku ji bo te çêdikin, ji xwe re bike xanî.

**69**- Paşê ji texlîtên fêkiyan bixwe, bikeve wan riyên ku Xwedayê te ji bo te hêsan kirin (û li rizqê xwe bigere). Di nav hinavê wê de şerbeteke (hungivînekî) rengereng tê der ku tê de ji bo mirovan şîfa heye. Bêguman di vê de ji bo civateke ku tê bigihîjin, nîşan hene (ku hêz û mezinatiya Xwedê didin zanîn).

**70**- Xwedê Teala hûn (ji tuneyî) afirandin, piştre dê we bimirîne. Hinekan ji we vedigerîne wezatirîn temenî ku piştî zanînê tiştekî nizanibe (da bizane ka nezanîn çi ye). Bêguman Xwedê (bi her tiştî) zana ye, (li ser her tiştî) kara ye.

**71**- Xwedê Teala di rizqdayînê de hin ji we di ser hinan re girtine. Vêca ew ên ku bi dayîna rizq di ser yên din re hatine girtin, ne ew in ku malê xwe bidine kole û xizmetkarên xwe, da ku ew tev di rizq de bibin wekhev. Erê ma vêca ew nîmetên Xwedê Teala mandel dikin?

**72**- (Gelî mêran!) Xwedê Teala ji nifşê we, ji bo we hevser û hevjiyan afirandin, zarok û nevî ji wan hevseran dane we û tiştê pak û paqij kiriye rizqê we. Ma qey ew hê jî ji pûçiyê bawer dikin û di biwara nîmetên Xwedê Teala de nankoriyê dikin?

وَيَعْبُدُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ مَا لَا يَمْلِكُ لَهُمْ رِزْقًا مِنَ السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضِ شَيْـًٔا وَلَا يَسْتَطِيعُونَ ۚ ﴿٧٣﴾ فَلَا تَضْرِبُوا لِلّٰهِ الْاَمْثَالَ ۜ
اِنَّ اللّٰهَ يَعْلَمُ وَاَنْتُمْ لَا تَعْلَمُونَ ﴿٧٤﴾ ضَرَبَ اللّٰهُ مَثَلًا عَبْدًا
مَمْلُوكًا لَا يَقْدِرُ عَلٰى شَيْءٍ وَمَنْ رَزَقْنَاهُ مِنَّا رِزْقًا حَسَنًا
فَهُوَ يُنْفِقُ مِنْهُ سِرًّا وَجَهْرًا ۜ هَلْ يَسْتَوُ۫نَ ۜ اَلْحَمْدُ لِلّٰهِ ۜ بَلْ
اَكْثَرُهُمْ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٧٥﴾ وَضَرَبَ اللّٰهُ مَثَلًا رَجُلَيْنِ
اَحَدُهُمَٓا اَبْكَمُ لَا يَقْدِرُ عَلٰى شَيْءٍ وَهُوَ كَلٌّ عَلٰى مَوْلٰيهُ ۙ
اَيْنَمَا يُوَجِّهْهُ لَا يَأْتِ بِخَيْرٍ ۜ هَلْ يَسْتَوٖي هُوَ ۙ وَمَنْ يَأْمُرُ
بِالْعَدْلِ ۙ وَهُوَ عَلٰى صِرَاطٍ مُسْتَقٖيمٍ ۚ ﴿٧٦﴾ وَلِلّٰهِ غَيْبُ السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضِ ۜ وَمَٓا اَمْرُ السَّاعَةِ اِلَّا كَلَمْحِ الْبَصَرِ اَوْ هُوَ
اَقْرَبُ ۜ اِنَّ اللّٰهَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَدٖيرٌ ﴿٧٧﴾ وَاللّٰهُ اَخْرَجَكُمْ
مِنْ بُطُونِ اُمَّهَاتِكُمْ لَا تَعْلَمُونَ شَيْـًٔا ۙ وَجَعَلَ لَكُمُ
السَّمْعَ وَالْاَبْصَارَ وَالْاَفْـِٔدَةَ ۙ لَعَلَّكُمْ تَشْكُرُونَ ﴿٧٨﴾
اَلَمْ يَرَوْا اِلَى الطَّيْرِ مُسَخَّرَاتٍ فٖي جَوِّ السَّمَٓاءِ ۜ مَا
يُمْسِكُهُنَّ اِلَّا اللّٰهُ ۜ اِنَّ فٖي ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِقَوْمٍ يُؤْمِنُونَ ﴿٧٩﴾

وَاللّٰهُ

**73**- Ew (muşrik) ji bilî Xwedê îbadetê pût û seneman dikin ku ew ne dikarin li erd û asîmanan rizqê wan bidin û ew neşên vê jî bikin.

**74**- Vêca hûn ji bo Xwedê tu metelokan negerînin (lewra Xwedê yek e û bêmînak e). Bêguman Xwedê (nebaşiya metelokanîna we) dizane lê hûn bi xwe nizanin.

**75**- Xwedê Teala, mînaka evdekî dide ku ew bi xwe milkê yekî din e û hêza wî li ser tiştekî nîn e û mînaka mirovekî azad dide ku me rizqekî pak dayê, vêca ew jî bi dizî û aşkera (di riya Xwedê de) xerc dike. Erê ma ev her du dibin wekhev? (Helbet, na!) Pesn û spasî ji Xwedê re ne, belê pirên wan nizanin.

**76**- Xwedê Teala ji du zilaman mînakê dide; yek ji wan lal e, hêza wî li ser tiştekî nîn e û ew li ser xwediyê xwe bar e; Xwediyê wî bi ku ve wî bişîne ew tu qenciyekê nayîne. Vêca erê ma ev (zilam) û ew ê ku bi xwe li ser riyeke rast be û bi dadî ferman dike, dibine mîna hev?

Xwedê du numûne diyar kirin. Numûneya yekem ji bo xwe û pûtan aniye. Ellah xwediyê her tiştî ye, çawa bixwaze; bi dizî, bi eşkereyî, bi şevê, bi rojê wisa dide bendeyê xwe. Pût, ne wisa ne; ew naçar in û nikarin tiştekî bikin. Vêca digel vê nehemkûfiya mezin û ferqa eşkere ew çawa pûtan ji min re dikin hevpar û ji bilî min, wan dihebînin?!

Numûneya duyem: Ew pûtê ku ji bilî Xwedê îbadetê wî tê kirin mîna zilamekî lal e. Ne dikare fêm bike, ne jî dikare biaxive. Ji vê zêdetir jî dil û zimanê wî her du lal in. Digel vê, hemin ew neşê tiştekî bike. Tu, wî bişînî ku derê ew qenciyekê ji te re nayine û pêdiviyeke te temîn nake. Xwedê jî sax e, dikare her tiştî bike, bipeyive, emrê dadmendiyê dike û rêya wî rêyeke rast û durist e. Ev wesf ji bo Xwedê di zirweya kemal û tekûziyê de ye. Divê mirov baş bifikire û nekeve xefka muşrikiya hevçerxî ya ku îro di bin hin navên hunermendî û dirûşmên ronak de însanên tênegihîştî dixapîne.

**77**- Zanîna nepeniya erd û asîmanan her ji Xwedê re ye. Rewşa roja qiyametê (li cem Xwedê) wekî çavgirtinekê ye, belkî ji wê jî nêzîktir e. Bêguman Xwedê Teala li ser her tiştî qadir e.

**78**- (Gelî mirovan!) Xwedê Teala hûn ji zikê dayîkên we (biçûk û lawaz) deranîn ku we hîç tiştek nizanîbû. Xwedê Teala guh, çav û dil dane we da ku hûn şukra wî bikin.

**79**- Erê, ma ew berê xwe nadin teyran, ew wisan hatine çêkirin ku bi hêsanî li hewayê difirin? Bes Xwedê Teala ye yê ku nahêle ew bikevin. Bêguman di vê de ji bo civateke ku bawerî bîne, (li ser desthilatiya Xwedê) nîşan hene.

وَاللّٰهُ جَعَلَ لَكُمْ مِنْ بُيُوتِكُمْ سَكَنًا وَجَعَلَ لَكُمْ
مِنْ جُلُودِ الْاَنْعَامِ بُيُوتًا تَسْتَخِفُّونَهَا يَوْمَ ظَعْنِكُمْ وَيَوْمَ
اِقَامَتِكُمْ وَمِنْ اَصْوَافِهَا وَاَوْبَارِهَا وَاَشْعَارِهَا اَثَاثًا
وَمَتَاعًا اِلٰى حِينٍ ﴿٨٠﴾ وَاللّٰهُ جَعَلَ لَكُمْ مِمَّا خَلَقَ ظِلَالًا
وَجَعَلَ لَكُمْ مِنَ الْجِبَالِ اَكْنَانًا وَجَعَلَ لَكُمْ سَرَابِيلَ
تَقِيكُمُ الْحَرَّ وَسَرَابِيلَ تَقِيكُمْ بَأْسَكُمْ كَذٰلِكَ يُتِمُّ
نِعْمَتَهُ عَلَيْكُمْ لَعَلَّكُمْ تُسْلِمُونَ ﴿٨١﴾ فَاِنْ تَوَلَّوْا فَاِنَّمَا عَلَيْكَ
الْبَلَاغُ الْمُبِينُ ﴿٨٢﴾ يَعْرِفُونَ نِعْمَتَ اللّٰهِ ثُمَّ يُنْكِرُونَهَا
وَاَكْثَرُهُمُ الْكَافِرُونَ ﴿٨٣﴾ وَيَوْمَ نَبْعَثُ مِنْ كُلِّ اُمَّةٍ
شَهِيدًا ثُمَّ لَا يُؤْذَنُ لِلَّذِينَ كَفَرُوا وَلَا هُمْ يُسْتَعْتَبُونَ
﴿٨٤﴾ وَاِذَا رَاَ الَّذِينَ ظَلَمُوا الْعَذَابَ فَلَا يُخَفَّفُ عَنْهُمْ وَلَا
هُمْ يُنْظَرُونَ ﴿٨٥﴾ وَاِذَا رَاَ الَّذِينَ اَشْرَكُوا شُرَكَاءَهُمْ
قَالُوا رَبَّنَا هٰؤُلَاءِ شُرَكَاؤُنَا الَّذِينَ كُنَّا نَدْعُوا مِنْ
دُونِكَ فَاَلْقَوْا اِلَيْهِمُ الْقَوْلَ اِنَّكُمْ لَكَاذِبُونَ ﴿٨٦﴾ وَاَلْقَوْا اِلَى
اللّٰهِ يَوْمَئِذٍ السَّلَمَ وَضَلَّ عَنْهُمْ مَا كَانُوا يَفْتَرُونَ ﴿٨٧﴾

**80**- Xwedê Teala xaniyên we ji bo we kirine rawestgeh. Ji çermên deve, dewar û pezan jî we xanî çêkirin ku ew di roja rêwîtî û cihwarbûyîna we de, hilgirtina wan sivik e. Ji hiriya mêşinan, liva deveyan û keja bizinan jî ji bo we navmal gerandiye ku heyanî demekê hûn jê feydê wergirin.

**81**- Xwedê Teala ji wan tiştê wî afirandî ji bo we sî û sîwan çêkirin. Ji bo we ji çiyan jî mesken afirandin. Ji bo we kiras çêkirin da ku we ji germê (û sermayê) biparêzin û ji we rė kumzirx çêkirin ku di şer de we biparêzin. Bi vî awayî Xwedê Teala (li dinyayê) qenciya xwe li ser we temam dike da ku hûn ji emrê wî re berdest bibin.

**82**- Eger dîsa ew berê xwe (ji îmanê) vegerînin, vêca bi rastî erka te bes ragihandina tekûz a aşkera ye.

**83**- Ew (kafir), qenciyên Xwedê li ser xwe dizanin û paşê (bi kar û kiryarên xwe) wan mandel dikin û pirên wan jî kafir in.

**84**- Roja ku em ji her umetekê şahidekî (pêxemberê wan) dişînin, paşê destûra wan ên ku kafir bûne nayê dayîn (ku lêborîna xwe bixwazin) û lêborînxwazî jî ji wan nayê xwestin.

**85**- Dema sitemkar ezab dibînin, ezab li ser wan nayê sivikkirin û ji wan re muhlet jî nayê dayîn.

**86**- Dema muşrik çav bi wan hevpişkan dikevin, ew ên ku wan (ji bilî Xwedê) ew dihebandin, dibêjin: Xwedayê me! Ha ev in, ew hevpişkên ku ji bilî te me ew dihebandin. Vêca hevpişkên wan jî axaftina wan li wan zivirand, gotin: Bi rastî hûn derewker in (me tu car ji we re negotiye me bihebînin).

**87**- Di wê rojê de muşrik ji hukmê Xwedê re berdest dibin û yên ku wan lêdianî (ku ew ê berevaniya wan bikira) ji ber wan winda dibin.

اَلَّذٖينَ كَفَرُوا وَصَدُّوا عَنْ سَبٖيلِ اللّٰهِ زِدْنَاهُمْ عَذَابًا
فَوْقَ الْعَذَابِ بِمَا كَانُوا يُفْسِدُونَ ﴿٨٨﴾ وَيَوْمَ نَبْعَثُ فٖى
كُلِّ اُمَّةٍ شَهٖيدًا عَلَيْهِمْ مِنْ اَنْفُسِهِمْ وَجِئْنَا بِكَ شَهٖيدًا
عَلٰى هٰٓؤُ۬لَٓاءِۜ وَنَزَّلْنَا عَلَيْكَ الْكِتَابَ تِبْيَانًا لِكُلِّ شَيْءٍ
وَهُدًى وَرَحْمَةً وَبُشْرٰى لِلْمُسْلِمٖينَ ﴿٨٩﴾ اِنَّ اللّٰهَ يَأْمُرُ
بِالْعَدْلِ وَالْاِحْسَانِ وَاٖيتَٓائِ ذِى الْقُرْبٰى وَيَنْهٰى عَنِ الْفَحْشَٓاءِ
وَالْمُنْكَرِ وَالْبَغْيِ يَعِظُكُمْ لَعَلَّكُمْ تَذَكَّرُونَ ﴿٩٠﴾ وَاَوْفُوا
بِعَهْدِ اللّٰهِ اِذَا عَاهَدْتُمْ وَلَا تَنْقُضُوا الْاَيْمَانَ بَعْدَ
تَوْكٖيدِهَا وَقَدْ جَعَلْتُمُ اللّٰهَ عَلَيْكُمْ كَفٖيلًاۜ اِنَّ اللّٰهَ
يَعْلَمُ مَا تَفْعَلُونَ ﴿٩١﴾ وَلَا تَكُونُوا كَالَّتٖى نَقَضَتْ غَزْلَهَا
مِنْ بَعْدِ قُوَّةٍ اَنْكَاثًاۜ تَتَّخِذُونَ اَيْمَانَكُمْ دَخَلًا بَيْنَكُمْ
اَنْ تَكُونَ اُمَّةٌ هِىَ اَرْبٰى مِنْ اُمَّةٍۜ اِنَّمَا يَبْلُوكُمُ اللّٰهُ بِهٖۜ
وَلَيُبَيِّنَنَّ لَكُمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ مَا كُنْتُمْ فٖيهِ تَخْتَلِفُونَ ﴿٩٢﴾
وَلَوْ شَٓاءَ اللّٰهُ لَجَعَلَكُمْ اُمَّةً وَاحِدَةً وَلٰكِنْ يُضِلُّ مَنْ
يَشَٓاءُ وَيَهْدٖى مَنْ يَشَٓاءُۜ وَلَتُسْـَٔلُنَّ عَمَّا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿٩٣﴾

وَلَا

**88**- Ew ên ku kafir bûne û riya Xwedê li ber mirovan girtin, bi sedema xerabiya ku kirin, Me ezabê wan qat bi qat zêde kir.

**89**- Wê roja ku ji her umetekê, ji nav wan, li ser wan em şahidekî bişînin (ku ew şahid peyxemberê wan in) û em te jî li ser van (mislimanan) şahid tînin. Me ev Quran ji bo te hinart ku ronkera her tiştî ye û ji bo mislimanan jî jêdera hîdayet, rehmet û mizgîniyê ye.

**90**- Bêguman Xwedê, bi dadiyê, qencîkariyê û xêrpêkirina li eqrebeyan ferman dike û bêrêtiyê, kirêtî û zêdegaviyê li we qedexe dike. Xwedê li we şîret dike da qene hûn bifikirin û jê şîretê wergirin.

**91**- Dema we peyman da, soz û peymanên xwe bi cih bînin. Piştî we sonda xwe mikûm kir û we Xwedê li ser xwe kire şahid, sonda xwe neşkînin. Bêguman Xwedê ya ku hûn dikin dizane.

**92**- Vêca hûn jî (di şikandina sondên xwe de) nebin wekî wê jinika ku piştî hiriya xwe bi zexm dirêsiya, (ji ber kêmeqliya xwe) dîsa vedikir, vêca ku hûn jî sondxwarina xwe bikin hîle û riya xapandinê di navbera xwe de, bi sedema ku hûn leqayî civatekê bibin ku ew (bi hejmar û mal ve) ji civata (ku we pê re payman daye) hîn bêhtir û bihêztir e. Xwedê bi van soz û peymanan bes we diceribîne û da ku roja qiyametê ya hûn tê de ketin îxtilafê ji bo we aşkere bike.

Ev pîreka kêmaqil a ku Xwedê ew wekî numûneya ehmeqiyê daye ji Mekkê bû. Navê wê Reyte keça Emr e. Karê wê ev bû; ji sibehê heyanî êvarê teşiya xwe dirêst, asê û saxlem dikir, piştre cardin bi paş ve difetiland û vedikir. Di vê ayetê de Xwedê, numûne ji bo wî kesî aniye ku peymanê dide, piştre peymana xwe dişkîne û nabe serî. Her wiha ayetê teşbîha wî kesî kiriye ku sond dixwe, soz dide û dûvre soza xwe dişkîne; bi wê pîreka ku pêşî teşiya xwe saxlem dirêse û dûvre wê çep vedigerîne û dîsa vedike. Bi vî awayî te'b û keda wî badîhewa diçe.

**93**- (Gelî mirovan!) Eger Xwedê Teala bixwesta dê hûn bikirina yek umet (û ehlê yek dînî), lê belê kî ku delaletê bivê ew wî ji rê dixe û kî jî hîdayete bivê ew wî rasterê dike. Bi rastî jî ji ya ku we dikir hûn ê bêne pirsiyarkirin.

وَلَا تَتَّخِذُوٓا اَيْمَانَكُمْ دَخَلًا بَيْنَكُمْ فَتَزِلَّ قَدَمٌ بَعْدَ ثُبُوتِهَا
وَتَذُوقُوا السُّٓوءَ بِمَا صَدَدْتُمْ عَنْ سَبِيلِ اللّٰهِ وَلَكُمْ
عَذَابٌ عَظِيمٌ ٩٤ وَلَا تَشْتَرُوا بِعَهْدِ اللّٰهِ ثَمَنًا قَلِيلًا اِنَّمَا
عِنْدَ اللّٰهِ هُوَ خَيْرٌ لَكُمْ اِنْ كُنْتُمْ تَعْلَمُونَ ٩٥
مَا عِنْدَكُمْ يَنْفَدُ وَمَا عِنْدَ اللّٰهِ بَاقٍ وَلَنَجْزِيَنَّ الَّذِينَ
صَبَرُوٓا اَجْرَهُمْ بِاَحْسَنِ مَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ٩٦ مَنْ عَمِلَ
صَالِحًا مِنْ ذَكَرٍ اَوْ اُنْثٰى وَهُوَ مُؤْمِنٌ فَلَنُحْيِيَنَّهُ
حَيٰوةً طَيِّبَةً وَلَنَجْزِيَنَّهُمْ اَجْرَهُمْ بِاَحْسَنِ مَا كَانُوا
يَعْمَلُونَ ٩٧ فَاِذَا قَرَاْتَ الْقُرْاٰنَ فَاسْتَعِذْ بِاللّٰهِ مِنَ الشَّيْطَانِ
الرَّجِيمِ ٩٨ اِنَّهُ لَيْسَ لَهُ سُلْطَانٌ عَلَى الَّذِينَ اٰمَنُوا وَعَلٰى
رَبِّهِمْ يَتَوَكَّلُونَ ٩٩ اِنَّمَا سُلْطَانُهُ عَلَى الَّذِينَ يَتَوَلَّوْنَهُ وَالَّذِينَ
هُمْ بِهِ مُشْرِكُونَ ١٠٠ وَاِذَا بَدَّلْنَٓا اٰيَةً مَكَانَ اٰيَةٍ وَاللّٰهُ
اَعْلَمُ بِمَا يُنَزِّلُ قَالُوٓا اِنَّمَٓا اَنْتَ مُفْتَرٍ بَلْ اَكْثَرُهُمْ لَا
يَعْلَمُونَ ١٠١ قُلْ نَزَّلَهُ رُوحُ الْقُدُسِ مِنْ رَبِّكَ بِالْحَقِّ
لِيُثَبِّتَ الَّذِينَ اٰمَنُوا وَهُدًى وَبُشْرٰى لِلْمُسْلِمِينَ ١٠٢

**94**- Sondên xwe, di navbera xwe de nekin riya hîle û xedr û xiyanetê, vêca ku (di nav xelkê de) siyaneta we pê bişike û di çavê xelkê de hûn bikevin piştî ku hûn xwedan siyanet û rûmet bûn. Bi sedema we xelk ji riya Xwedê dayî paş ezabekî pîs (li dinyayê) dê we bihingêve û ji bo we (li axretê jî) her ezabekî mezin heye.

Ev numûneya wî kesî ye ku li ser rêya rast be û piştre jê vedigere û bi sedema sonda gunehkarî ji rêya hîdayetê dişemite û nahêle ku xelk jî bikevin dînê Xwedê. Lewra mirovê kafir, gava bibîne ku mirovê mumin soz daye wî û piştre xedir lê kiriye, tu baweriya wî bi dîn namîne. Vêca ji ber wî nakeve îslamê.

**95**- Peymana ku we bi Xwedê re dayî (ku hûn ê riya Xwedê bigirin û bernedin) bi nirxekî hindik nefiroşin. Bêguman eger hûn bizanin bes a li cem Xwedê ji bo we çêtir e.

**96**- (Lewra;) ya li cem we (ji zêr û zîv û pertalê dinyayê) xelas dibe û ya li cem Xwedê ew seraqetî ye. Helbet ew ên ku xwe (li ser peymana xwe) ragirin, em ê xelata wan bi spehîtirîn a ku dikin, bidin wan.

**97**- Çi mêr be çi jin, kî karekî qenc bike û bawermend be, teqez em ê jiyaneke xweş bikin nesîbê wî û em ê xelata wan bi spehîtirîn a ku dikin, bidin wan.

"Jiyana xweş" jiyana bihiştê ye. Lewra bêyî cennetê ji tu kesî re jiyan xweş nabe. Tenha li bihiştê, jiyana bêmirin, dewlemendiya bêxizanî, tenduristiya bênxweşî û bextewariya bêbextreşî heye.

**98**- Çi dema te dest bi xwendina Quranê kir, vêca xwe ji (şerê) şeytanê qeşitî bi Xwedê xwe biparêze.

Yanî bibêje: "Eûzubillahî mîneşşeytanir recîm" ez, xwe ji neqenciya wî şeytanê qewitî tavêjim ber nîgaha Xwedê.

**99**- Bêguman ji şeytanî re tu desthilatî li ser yên ku bawerî bînin û yên xwe bispêrin Xwedayê xwe, tune ye.

**100**- Lê belê desthilatiya şeytên, li ser yên ku wî ji xwe re dikin dost û arîkar û li ser yên ku ji Xwedê Teala re şerîkan çêdikin, heye.

**101**- Dema em hukmê ayetekê (ji Quranê) tînin cihê ayetekê (ji Tewratê), (ku em hukmê ayetekê ji Tewratê bi hukmê ayeteke ji Quranê rakin) û ma ne Xwedê bêhtir dizane ka ew çi nazil dike, (wê demê kafir ji Pêxember re) dibêjin: Bes tu li ser navê Xwedê neweyî dibêjî. Nexêr, ne wisan e, pirên wan nezan û cahil in.

**102**- Bibêje: Canê Pak (Cibraîl), Quran ji cem Xwedayê te bi heqî aniye xwarê da ku yên bawerî anîn mikûm ragire û ji bo mislimanan jî bibe rêber û mizgîn.

سُورَةُ النَّحْلِ ٢٨٠

وَلَقَدْ نَعْلَمُ اَنَّهُمْ يَقُولُونَ اِنَّمَا يُعَلِّمُهُ بَشَرٌ لِسَانُ
الَّذٖى يُلْحِدُونَ اِلَيْهِ اَعْجَمِىٌّ وَهٰذَا لِسَانٌ عَرَبِىٌّ
مُبٖينٌ ١٠٣ اِنَّ الَّذٖينَ لَا يُؤْمِنُونَ بِاٰيَاتِ اللّٰهِ لَا يَهْدٖيهِمُ
اللّٰهُ وَلَهُمْ عَذَابٌ اَلٖيمٌ ١٠٤ اِنَّمَا يَفْتَرِى الْكَذِبَ
الَّذٖينَ لَا يُؤْمِنُونَ بِاٰيَاتِ اللّٰهِ وَاُولٰٓئِكَ هُمُ الْكَاذِبُونَ
١٠٥ مَنْ كَفَرَ بِاللّٰهِ مِنْ بَعْدِ اٖيمَانِهٖٓ اِلَّا مَنْ اُكْرِهَ
وَقَلْبُهُ مُطْمَئِنٌّ بِالْاٖيمَانِ وَلٰكِنْ مَنْ شَرَحَ بِالْكُفْرِ
صَدْرًا فَعَلَيْهِمْ غَضَبٌ مِنَ اللّٰهِ وَلَهُمْ عَذَابٌ
عَظٖيمٌ ١٠٦ ذٰلِكَ بِاَنَّهُمُ اسْتَحَبُّوا الْحَيٰوةَ الدُّنْيَا
عَلَى الْاٰخِرَةِ وَاَنَّ اللّٰهَ لَا يَهْدِى الْقَوْمَ الْكَافِرٖينَ
١٠٧ اُولٰٓئِكَ الَّذٖينَ طَبَعَ اللّٰهُ عَلٰى قُلُوبِهِمْ وَسَمْعِهِمْ
وَاَبْصَارِهِمْ وَاُولٰٓئِكَ هُمُ الْغَافِلُونَ ١٠٨ لَا جَرَمَ
اَنَّهُمْ فِى الْاٰخِرَةِ هُمُ الْخَاسِرُونَ ١٠٩ ثُمَّ اِنَّ
رَبَّكَ لِلَّذٖينَ هَاجَرُوا مِنْ بَعْدِ مَا فُتِنُوا ثُمَّ جَاهَدُوا
وَصَبَرُوا اِنَّ رَبَّكَ مِنْ بَعْدِهَا لَغَفُورٌ رَحٖيمٌ ١١٠

يَوْمَ

**103**- Sond be, em dizanin ku ew (kafir) dibêjin, ew ê ku Quranê fêrî Muhemmed dike bes mirov in; (ne melayîket in). Ew ê ku hizir dikin (ku qaşo wî Quran fêrî Muhemmed kiriye) biyanî ye; (ne erebî ye). Hal ev e ku ev (Quran) bi zimanekî erebî, aşkera û zelal e, (vêca mirovê ku ne ereb be dê çawa Muhemmed fêrî Quraaneke erebî bike, erê ma ew vê rastiyê jî nabînin?)

**104**- Bêguman ew ên ku bawerî bi ayetên Xwedê nayînin, Xwedê wan rasterê nake û ji bo wan ezabekî dijwar heye.

**105**- Bêguman ên ku bawerî bi ayetên Xwedê nayînin bes derewan lê tînin û ew derewker bi xwe ne.

**106**- (Bes ew ê ku derewan lê tîne) ew kes e ku piştî bawerî bi Xwedê anî wî mandel bike, ji bilî yê ku xurtî lê hatî kirin ku dilê wî jî tije îman be (ew gazin jê nayê kirin). Lê belê kî ji kufrê re sînga xwe veke (û pê xweş bibe) vêca xezeba Xwedê li ser wan e û ji bo wan ezabekî mezin heye.

Li gorî ji Îbnîebbas hatiye rîwayetkirin, muşrikan Emmar, Yasirê bavê wî, dayîka wî Sumeyye, Suheyb û Bilal girtin û şkence li wan kirin. Sumeyye û mêrê xwe Yasir jî di şkenceyê de hatine kuştin -di tarîxa îslamê de ew her du şehîdên pêşî ne-. Her çî ku Emmar bû, zorî lê kiribûn û wî jî ya ku jê xwestibûn, gotibû. Vêca gilehê vê rewşa xwe ji Pêxember re kir. Pêxember got: Tu dilê xwe çawa dibînî? Got: Bi îmanê tije ye. Pêxember got: Heke ew car din zorê li te bikin tu jî dîsa wilo bibêje. Vêca Xwedê di heqê vê mijarê de ew ayeta ku li jor borî nazil kir. Bi vî awayî destûr da bawermendan ku di bin şkenceyê de dikarin tiştên nerewa bibêjin û ev yek wan ji dîn jî dernaxe.

**107**- Ev (ezab) jî, ji ber ku wan jiyana dinyayê di ser ya axîretê re girtiye. Bêguman Xwedê civata kafir nayîne riya rast.

**108**- Ev ên han, ew ên ku Xwedê mor li ser dil, guh û çavên wan xistiye û ew bi xwe jî bêagah in.

Ji "Ewa ku berê me ji te re ragihandî" mebest ev e; ya ku behsa wê di Sûreyê En'am de derbas bûye. Tişta ku Xwedê li wan heram kiribû jî; bezê dewar û pez û her heywana xweyneynok bû. Ev heramkirin jî, ji bo wan ceza bû.

**109**- Bêşik û şubhe, di axretê de yên xesirîne ew bi xwe ne.

**110**- Paşê Xwedayê te, ji bo yên ku wan piştî şkence li wan bûye hîcret kir, paşê cîhad kir û xwe ragirtin (sebir kêşan); bêguman Xwedayê te piştî vê kirina wan, teqez gunehjêbir e, dilovîn e.

يَوْمَ تَأْت۪ي كُلُّ نَفْسٍ تُجَادِلُ عَنْ نَفْسِهَا وَتُوَفّٰى كُلُّ
نَفْسٍ مَا عَمِلَتْ وَهُمْ لَا يُظْلَمُونَ ﴿١١١﴾ وَضَرَبَ اللّٰهُ مَثَلًا
قَرْيَةً كَانَتْ اٰمِنَةً مُطْمَئِنَّةً يَأْت۪يهَا رِزْقُهَا رَغَدًا مِنْ
كُلِّ مَكَانٍ فَكَفَرَتْ بِاَنْعُمِ اللّٰهِ فَاَذَاقَهَا اللّٰهُ لِبَاسَ
الْجُوعِ وَالْخَوْفِ بِمَا كَانُوا يَصْنَعُونَ ﴿١١٢﴾ وَلَقَدْ جَٓاءَهُمْ
رَسُولٌ مِنْهُمْ فَكَذَّبُوهُ فَاَخَذَهُمُ الْعَذَابُ وَهُمْ ظَالِمُونَ
﴿١١٣﴾ فَكُلُوا مِمَّا رَزَقَكُمُ اللّٰهُ حَلَالًا طَيِّبًا وَاشْكُرُوا
نِعْمَتَ اللّٰهِ اِنْ كُنْتُمْ اِيَّاهُ تَعْبُدُونَ ﴿١١٤﴾ اِنَّمَا حَرَّمَ عَلَيْكُمُ
الْمَيْتَةَ وَالدَّمَ وَلَحْمَ الْخِنْز۪يرِ وَمَٓا اُهِلَّ لِغَيْرِ اللّٰهِ بِه۪ۚ
فَمَنِ اضْطُرَّ غَيْرَ بَاغٍ وَلَا عَادٍ فَاِنَّ اللّٰهَ غَفُورٌ رَح۪يمٌ
﴿١١٥﴾ وَلَا تَقُولُوا لِمَا تَصِفُ اَلْسِنَتُكُمُ الْكَذِبَ هٰذَا حَلَالٌ
وَهٰذَا حَرَامٌ لِتَفْتَرُوا عَلَى اللّٰهِ الْكَذِبَۜ اِنَّ الَّذ۪ينَ يَفْتَرُونَ
عَلَى اللّٰهِ الْكَذِبَ لَا يُفْلِحُونَۜ ﴿١١٦﴾ مَتَاعٌ قَل۪يلٌ وَلَهُمْ عَذَابٌ
اَل۪يمٌ ﴿١١٧﴾ وَعَلَى الَّذ۪ينَ هَادُوا حَرَّمْنَا مَا قَصَصْنَا عَلَيْكَ مِنْ
قَبْلُۚ وَمَا ظَلَمْنَاهُمْ وَلٰكِنْ كَانُوا اَنْفُسَهُمْ يَظْلِمُونَ ﴿١١٨﴾

**111**- (Xwedê gunehjêbir û dilovîn e) di wê roja ku her kes tê (meydana hesabê), li ber xwe dide da ku xwe rizgar bike û wê roja her kes çi kiribe jê re tê dayîn û neheqî jî qet lê nayê kirin.

**112**- Xwedê Teala, mîsala warekî dide ku gelê wî di nav selametî û rihetiyê de bûn. Ji her alî ve rizqê wan bi firehî ji bo wan dihat, vêca li biwara nîmetên Xwedê nankorî kirin. Êdî Xwedê ji ber a ku wan dikir kirasê birçîbûn û tirsê li wan kir û ew pê çêjandin.

**113**- Sond be, ji wan re pêxemberek ji nav wan hat, vêca wan bawerî pê neanî. Êdî ezeb ew hingaftin û teqez ew sitemkar bûn.

**114**- Êdî bi helalî û pakî ji wî rizqê ku Xwedê daye we bixwin û şêkiriya nîmetên Xwedê bikin, eger bi rastî hûn bes jê re îbadetê dikin.

**115**- (Xwedê Teala) ji bo we bes heywana mirar, xwîn, goştê berêz û heywana ku ne ji bo Xwedê hatî şerjêkirin, heram kiriye. Vêca kesê ku mecbûrî (xwarina van) bibe, bi şertê ku ne ji dilxweşî be û ji tixûbê hewcedariyê nebore (dikare bixwe). Vêca bêguman Xwedê Teala gunehjêbir e dilovîn e.

**116**- Qet tu caran, ji cem xwe, bi derewî nebêjin: Ev helal e, ev jî heram e, ku hûn li ser navê Xwedê neweyî bibêjin, bêguman ew ên ku li ser navê Xwedê derewan lê tînin bi ser nakevin.

**117**- (Ev a ku ji derew ve bi dest xwe ve anîn) pêxweşî û jiyaneke hindik e û (li axîretê jî) ji wan re ezabekî dijwar heye.

**118**- (Resûlê min!) Ew a ku berî niha Me ji te re gotî, ma ne Me ew li cihûyan heram kiribû. Me (bi vê heramkirinê) li wan zilm nekiriye, lê belê wan bi xwe li xwe zilm dikir.

ثُمَّ اِنَّ رَبَّكَ لِلَّذِينَ عَمِلُوا السُّوءَ بِجَهَالَةٍ ثُمَّ تَابُوا مِنْ
بَعْدِ ذٰلِكَ وَاَصْلَحُوا اِنَّ رَبَّكَ مِنْ بَعْدِهَا لَغَفُورٌ رَحِيمٌ
١١٩ اِنَّ اِبْرٰهِيمَ كَانَ اُمَّةً قَانِتًا لِلّٰهِ حَنِيفًا وَلَمْ يَكُ مِنَ
الْمُشْرِكِينَ ١٢٠ شَاكِرًا لِاَنْعُمِهِ اِجْتَبٰيهُ وَهَدٰيهُ اِلٰى صِرَاطٍ
مُسْتَقِيمٍ ١٢١ وَاٰتَيْنَاهُ فِى الدُّنْيَا حَسَنَةً وَاِنَّهُ فِى الْاٰخِرَةِ
لَمِنَ الصَّالِحِينَ ١٢٢ ثُمَّ اَوْحَيْنَا اِلَيْكَ اَنِ اتَّبِعْ مِلَّةَ اِبْرٰهِيمَ
حَنِيفًا وَمَا كَانَ مِنَ الْمُشْرِكِينَ ١٢٣ اِنَّمَا جُعِلَ السَّبْتُ عَلَى
الَّذِينَ اخْتَلَفُوا فِيهِ وَاِنَّ رَبَّكَ لَيَحْكُمُ بَيْنَهُمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ
فِيمَا كَانُوا فِيهِ يَخْتَلِفُونَ ١٢٤ اُدْعُ اِلٰى سَبِيلِ رَبِّكَ بِالْحِكْمَةِ
وَالْمَوْعِظَةِ الْحَسَنَةِ وَجَادِلْهُمْ بِالَّتِى هِىَ اَحْسَنُ اِنَّ
رَبَّكَ هُوَ اَعْلَمُ بِمَنْ ضَلَّ عَنْ سَبِيلِهِ وَهُوَ اَعْلَمُ بِالْمُهْتَدِينَ
١٢٥ وَاِنْ عَاقَبْتُمْ فَعَاقِبُوا بِمِثْلِ مَا عُوقِبْتُمْ بِهِ وَلَئِنْ
صَبَرْتُمْ لَهُوَ خَيْرٌ لِلصَّابِرِينَ ١٢٦ وَاصْبِرْ وَمَا صَبْرُكَ اِلَّا
بِاللّٰهِ وَلَا تَحْزَنْ عَلَيْهِمْ وَلَا تَكُ فِى ضَيْقٍ مِمَّا يَمْكُرُونَ
١٢٧ اِنَّ اللّٰهَ مَعَ الَّذِينَ اتَّقَوْا وَالَّذِينَ هُمْ مُحْسِنُونَ ١٢٨



**119**- Paşê, birastî Xwedayê te ji bo yên ku bi nezanî guneh kirin, piştî hingê poşman bûn û xwe rast kirin, bêguman Xwedayê te piştî vê helbet gunehjêbir e, dilovîn e.

**120**- Bêguman Îbrahîm yek miletek bû, di xêrê de rêber û pêşîvan bû, radestî ber fermana Xwedê bû, ji xwarî û xerabiyê veder bû û ew ne ji muşrikan bû.

**121**- Îbrahîm, şukirdarê nîmetên Xwedê bû, Xwedê ew neqandibû û li ser riya rast û durist ew rasterê kiribû.

**122**- Me li dinyayê kerem pê re kir û bêguman ew li axîretê jî ji qencîkaran e.

**123**- (Ya Muhammed!) Paşê me peyam da te, (me got:) bide pey dînê Îbrahîm ku ew ji xwarî û pûçiyê veder bû û ew bi xwe ne ji muşrikan bû.

**124**- Bêhnvedana di roja şemiyê de, bes li ser yên ku tê de îxtilaf kiribûn hatibû ferzkirin (ne ku ji şerîeta Îbrahîm bû). Bêguman Xwedayê te roja qiyametê der barê wê de ya ku ew tê de ketine îxtilafê dê di navbera wan de hukim bike.

**125**- (Ya Muhemmed!) Tu bi zanîn û bi şîreta spehî (mirovan) vexwîne riya Xwedayê xwe û bi wan re bi rindtirîn awayî têbikoşe. Bêguman Xwedayê te bêhtir dizane bi yê ku ji riya wî şaş bûye û ew bêhtir dizane bi yê ku rasterê jî bûye.

**126**- Eger hûn ceza bidin, bi qasî ya ku li we hatî kirin ceza bidin. Lê belê ku hûn xwe ragirin û sebrê bikêşin, helbet ew (sebirkirin) ji xweragiran re hê çêtir e.

**127**- Xwe ragire (sebrê bikêşe)! Xweragirtina te jî bes bi arîkariya Xwedê ye. Ji bo wan (dijberên xwe) xemgîn nebe û bila bêhna te teng nebe ji ber dek û dolabên wan!

**128**- Bêguman Xwedê digel ên teqwadar, ên qencîkar û qencîxwazan e.

سُورَةُ الْإِسْرَاءِ مَكِّيَّةٌ وَهِيَ
مِائَةٌ وَاحْدٰى عَشْرَةَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ

سُبْحَانَ الَّذ۪ٓى اَسْرٰى بِعَبْدِه۪ لَيْلًا مِنَ الْمَسْجِدِ الْحَرَامِ اِلَى
الْمَسْجِدِ الْاَقْصَا الَّذ۪ى بَارَكْنَا حَوْلَهُ لِنُرِيَهُ مِنْ اٰيَاتِنَاۜ اِنَّهُ
هُوَ السَّم۪يعُ الْبَص۪يرُ ﴿١﴾ وَاٰتَيْنَا مُوسَى الْكِتَابَ وَجَعَلْنَاهُ هُدًى
لِبَن۪ٓى اِسْرَٓائ۪يلَ اَلَّا تَتَّخِذُوا مِنْ دُون۪ى وَك۪يلًاۜ ﴿٢﴾ ذُرِّيَّةَ مَنْ حَمَلْنَا
مَعَ نُوحٍۜ اِنَّهُ كَانَ عَبْدًا شَكُورًا ﴿٣﴾ وَقَضَيْنَٓا اِلٰى بَن۪ٓى اِسْرَٓائ۪يلَ
فِى الْكِتَابِ لَتُفْسِدُنَّ فِى الْاَرْضِ مَرَّتَيْنِ وَلَتَعْلُنَّ عُلُوًّا كَب۪يرًا ﴿٤﴾
فَاِذَا جَٓاءَ وَعْدُ اُو۫لٰيهُمَا بَعَثْنَا عَلَيْكُمْ عِبَادًا لَنَٓا اُو۬ل۪ى بَاْسٍ
شَد۪يدٍ فَجَاسُوا خِلَالَ الدِّيَارِۜ وَكَانَ وَعْدًا مَفْعُولًا ﴿٥﴾ ثُمَّ رَدَدْنَا
لَكُمُ الْكَرَّةَ عَلَيْهِمْ وَاَمْدَدْنَاكُمْ بِاَمْوَالٍ وَبَن۪ينَ وَجَعَلْنَاكُمْ اَكْثَرَ
نَف۪يرًا ﴿٦﴾ اِنْ اَحْسَنْتُمْ اَحْسَنْتُمْ لِاَنْفُسِكُمْ وَاِنْ اَسَاْتُمْ فَلَهَاۜ
فَاِذَا جَٓاءَ وَعْدُ الْاٰخِرَةِ لِيَسُٓؤُ۫ا وُجُوهَكُمْ وَلِيَدْخُلُوا
الْمَسْجِدَ كَمَا دَخَلُوهُ اَوَّلَ مَرَّةٍ وَلِيُتَبِّرُوا مَا عَلَوْا تَتْب۪يرًا ﴿٧﴾

## SÛREYÊ ISRA

Sûreyê Îsra 111 (sed û yazdeh) ayet e. li Mekkê daketiye. Ji ber ku ayeta yekem, behsa mucîzeya Pêxember a Îsrayê -ya ku bi şev di kêlîkekê de ji Ke'bê çûye Qudsê- dike, ji vî Sûreyî re Îsra, ku bi wateya lirêçûna bi şev e, hatiye gotin.

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn**

1- Xwedê ji her kêmasî û pûçiyê pak û bêrî ye, ew ê ku bendeyê xwe (Muhemmed) di şevekê de ji Mescîdul Heramê (Kebeyê) biriye Mescîdul Eqsayê ya ku me hawirdora wê pîroz kiriye, (me ew bire Mizgefta Eqsayê) da ku em nîşanên xwe şanî wî bidin. Bêguman Xwedê, her ew e yê bihîzer, yê bîner.

2- Me kitêb (Tewrat) da Mûsa û me ew ji îsraîliyan re kir riya hîdayetê (û me tê de ji wan re got:) Ji bilî min tu kesî ji xwe re nekin wekîl (piştek û arîkar).

3- Ez ji we re dibêjim, gelî kinêsa yên ku me ew digel Nûh Pêxember (li keştiyê) siwar kirin, bêguman Nûh evdekî zêde şukirdar bû.

4- Me di Tewratê de ji îsraîliyan re ragihand ku hûn ê du caran li ser erdê xerabî û tevdanê derînin û bêguman hûn (bi zilm û xerabiya xwe) dê bi serkeftineke mezin bi ser xelkê bikevin.

5- Vêca dema çaxê cezadana cara yekê hat, em ê hinek bendeyên xwe yên xwedanhêz û dijwar bi ser wan de bişînin, vêca ew ê bi xerabkarî bikevin nav welatê we (da ku we bikujin û we dîl bigirin). Ev peymaneke rast e ku her dê çêbe.

6- (Gelî îsraîliyan!) Paşê li hemberî wan dîsa me serkeftin da we û bi serwet û zarokan me hêza we zêde kir û me hejmara we jî pir kir.

7- Êdî eger hûn qenciyê bikin hûn ji bo xwe dikin û eger hûn xerabiyê jî bikin hûn (ziyanê) li xwe dikin. Dema çaxê cezakirina diduyan hat (em ê dîsa bendeyên xwe yên xwedanhêz û dijwar bi ser we de bişînin) dê rûyê we reş bikin û çawa ku cara pêşîn çûbûn mizgefta (Qudsê) dîsa wisan dê biçin tê de û çi tiştên bi dest xistin dê tarûmar bikin.

عَسٰى رَبُّكُمْ اَنْ يَرْحَمَكُمْ وَاِنْ عُدْتُمْ عُدْنَا وَجَعَلْنَا جَهَنَّمَ
لِلْكَافِرِينَ حَصِيرًا ﴿٨﴾ اِنَّ هٰذَا الْقُرْاٰنَ يَهْدِى لِلَّتِى هِىَ اَقْوَمُ
وَيُبَشِّرُ الْمُؤْمِنِينَ الَّذِينَ يَعْمَلُونَ الصَّالِحَاتِ اَنَّ لَهُمْ اَجْرًا كَبِيرًا ﴿٩﴾
وَاَنَّ الَّذِينَ لَا يُؤْمِنُونَ بِالْاٰخِرَةِ اَعْتَدْنَا لَهُمْ عَذَابًا اَلِيمًا ﴿١٠﴾ وَيَدْعُ
الْاِنْسَانُ بِالشَّرِّ دُعَاۤءَهُ بِالْخَيْرِ وَكَانَ الْاِنْسَانُ عَجُولًا ﴿١١﴾ وَجَعَلْنَا
الَّيْلَ وَالنَّهَارَ اٰيَتَيْنِ فَمَحَوْنَا اٰيَةَ الَّيْلِ وَجَعَلْنَا اٰيَةَ النَّهَارِ مُبْصِرَةً
لِتَبْتَغُوا فَضْلًا مِنْ رَبِّكُمْ وَلِتَعْلَمُوا عَدَدَ السِّنِينَ وَالْحِسَابَ
وَكُلَّ شَيْءٍ فَصَّلْنَاهُ تَفْصِيلًا ﴿١٢﴾ وَكُلَّ اِنْسَانٍ اَلْزَمْنَاهُ طَۤائِرَهُ فِى
عُنُقِهِ وَنُخْرِجُ لَهُ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ كِتَابًا يَلْقٰيهُ مَنْشُورًا ﴿١٣﴾ اِقْرَاْ
كِتَابَكَ كَفٰى بِنَفْسِكَ الْيَوْمَ عَلَيْكَ حَسِيبًا ﴿١٤﴾ مَنِ اهْتَدٰى
فَاِنَّمَا يَهْتَدِى لِنَفْسِهِ وَمَنْ ضَلَّ فَاِنَّمَا يَضِلُّ عَلَيْهَا وَلَا تَزِرُ
وَازِرَةٌ وِزْرَ اُخْرٰى وَمَا كُنَّا مُعَذِّبِينَ حَتّٰى نَبْعَثَ رَسُولًا ﴿١٥﴾
وَاِذَا اَرَدْنَا اَنْ نُهْلِكَ قَرْيَةً اَمَرْنَا مُتْرَفِيهَا فَفَسَقُوا فِيهَا فَحَقَّ
عَلَيْهَا الْقَوْلُ فَدَمَّرْنَاهَا تَدْمِيرًا ﴿١٦﴾ وَكَمْ اَهْلَكْنَا مِنَ الْقُرُونِ
مِنْ بَعْدِ نُوحٍ وَكَفٰى بِرَبِّكَ بِذُنُوبِ عِبَادِهِ خَبِيرًا بَصِيرًا ﴿١٧﴾

مَنْ كَانَ

8- (Eger piştî cara diduyan hûn poşman bibin û tobe bikin) Dibe ku Xwedayê we li we rehmê bike. Eger dîsa hûn (ji tevdan û xerabiyê) vegerin, em ê jî (li cezakirina we) vegerin. Me dojeh ji bo kafiran kiriye girtîgeh û zîndan.

9- Bêguman ev Quran (mirovan) tîne riya herî rast û mizgînê dide bawermendan, ew ên ku kar û kiryarên qenc dikin ku ji bo wan xelateke mezin heye.

10- Bêguman ew ên ku bi axîretê bawerî nayînin, me ji bo wan ezabekî dijwar amade kiriye.

11- Mirov ka çawa duayê xêrê ji bo xwe dike her wisa nifiran jî li xwe dike. Însan, (bi siruşta xwe) pir bilez e.

12- Me şev û roj kirine du nîşan (li ser yekîtî û qudreta xwe), vêca me nîşana şevê xef (tarî) kir û me (di şûna wê de) nîşana rojê kire ronahî da ku hûn li kerema Xwedayê xwe (li rizqê xwe) bigerin û hûn (bi her duyan) hejmara sal û hesêb bizanin. Me her tişt bi berfirehî, aşkera ragihandiye.

13- Me deftera emelê her kesî bi stûyê wî ve daleqandiye. Roja qiyametê, em ê jê re deftereke (kar û kiryarên wî) vekirî ji bo wî derînin.

14- (Ji her kesî re wiha tê gotin:) Deftera (emelê) xwe bixwîne! Îro, ji hesabdîtin ve tu besî xwe yî.

15- Kî ku rasterê bibe vêca bêguman ew ji bo xwe rasterê bûye, kî jî ji riya rast bikeve êdî bêguman ew li xwe zerarê dike. Hîç tu gunehkar, gunehê kesekî din hilnagire. Heyanî em pêxemberekî neşînin em tu kesî nadin ezabê.

16- Dema em bixwazin xelkê welatekî helak bikin, em fermana qenciyê li dewlemend, serkar û mezinên wan dikin. Vêca ew guhdariya me nakin û ji rê derdikevin. Êdî helak ji bo wan heq dibe, vêca me jî warên wan kavil û wêran kirin.

17- Me piştî Nûh pir milet (ji ber kufra wan) ji nav birine. Xwedayê te, li ser gunehên bendeyên xwe ji haydarî û bînerî ve bes e.

مَنْ كَانَ يُرِيدُ الْعَاجِلَةَ عَجَّلْنَا لَهُ فِيهَا مَا نَشَٓاءُ لِمَنْ نُرِيدُ
ثُمَّ جَعَلْنَا لَهُ جَهَنَّمَ يَصْلٰيهَا مَذْمُومًا مَدْحُورًا ﴿١٨﴾ وَمَنْ
اَرَادَ الْاٰخِرَةَ وَسَعٰى لَهَا سَعْيَهَا وَهُوَ مُؤْمِنٌ فَاُولٰٓئِكَ كَانَ
سَعْيُهُمْ مَشْكُورًا ﴿١٩﴾ كُلًّا نُمِدُّ هٰٓؤُلَٓاءِ وَهٰٓؤُلَٓاءِ مِنْ عَطَٓاءِ
رَبِّكَ وَمَا كَانَ عَطَٓاءُ رَبِّكَ مَحْظُورًا ﴿٢٠﴾ اُنْظُرْ كَيْفَ فَضَّلْنَا
بَعْضَهُمْ عَلٰى بَعْضٍ وَلَلْاٰخِرَةُ اَكْبَرُ دَرَجَاتٍ وَاَكْبَرُ تَفْضِيلًا
﴿٢١﴾ لَا تَجْعَلْ مَعَ اللّٰهِ اِلٰهًا اٰخَرَ فَتَقْعُدَ مَذْمُومًا مَخْذُولًا ﴿٢٢﴾
وَقَضٰى رَبُّكَ اَلَّا تَعْبُدُٓوا اِلَّٓا اِيَّاهُ وَبِالْوَالِدَيْنِ اِحْسَانًا اِمَّا
يَبْلُغَنَّ عِنْدَكَ الْكِبَرَ اَحَدُهُمَٓا اَوْ كِلَاهُمَا فَلَا تَقُلْ لَهُمَٓا اُفٍّ
وَلَا تَنْهَرْهُمَا وَقُلْ لَهُمَا قَوْلًا كَرِيمًا ﴿٢٣﴾ وَاخْفِضْ لَهُمَا جَنَاحَ
الذُّلِّ مِنَ الرَّحْمَةِ وَقُلْ رَبِّ ارْحَمْهُمَا كَمَا رَبَّيَانِي صَغِيرًا ﴿٢٤﴾
رَبُّكُمْ اَعْلَمُ بِمَا فِي نُفُوسِكُمْ اِنْ تَكُونُوا صَالِحِينَ فَاِنَّهُ
كَانَ لِلْاَوَّابِينَ غَفُورًا ﴿٢٥﴾ وَاٰتِ ذَا الْقُرْبٰى حَقَّهُ وَالْمِسْكِينَ
وَابْنَ السَّبِيلِ وَلَا تُبَذِّرْ تَبْذِيرًا ﴿٢٦﴾ اِنَّ الْمُبَذِّرِينَ كَانُٓوا
اِخْوَانَ الشَّيَاطِينِ وَكَانَ الشَّيْطَانُ لِرَبِّهِ كَفُورًا ﴿٢٧﴾

**18-** Ew ê ku bi karên xwe (tenê) dinyayê bixwaze, em ji bo kesê ku em bivên a ku em bixwazin em ê bidinê, piştre jî em ê wî riswa bikin, (ji rehma xwe) biqewitînin û têxin dojehê.

**19-** Ew ê ku bi karên xwe axîretê bixwaze û lezê li kirina kare wê bike û digel wê kirinê ew bi bîr û bawer be, vêca xebata wan tê qebûlkirin.

**20-** Em ji dayîna Xwedayê te didine tevan; yên ku cîhanê dixwazin û yên ku axîretê jî dixwazin. Dayîna Xwedayê te li ser wan nehatiye birîn.

**21-** (Resûlê min!) De binêre, çawa me (di rizq û dereceyan de) hin kes di ser hin kesan re girtine û teqez dereceyên axretê gelek çêtir û gelek mezintir in.

**22-** Digel Xwedê Teala tu hevpişkan çêneke, vêca tu yê bibî şermezar û bêarîkar.

**23-** Xwedayê te ferman kiriye ku hûn îbadetê wî tenê bikin û digel dê û bavên xwe qenc bin. Vêca eger yek ji wan an jî her du li cem te kal bibin; ji bo wan 'Of! nebêje, wan neêşîne û ji bo wan xebereke xweş û germ bibêje.

**24-** Ji bo wan, bi dilovanî xwe nerm bike û milê xwe ji wan re deyne û bibêje: Xwedayê min! Dema ez biçûk bûm ka çawa wan ez xwedî kirim û dilovanî li min kirin her wisa tu jî dilovaniya xwe li wan bike.

**25-** Xwedayê we, ya ku di dilên we de ye bêhtir dizane. Eger hûn qenc bin, vêca bêguman Xwedê ji bo yên ku berê xwe ji neqenciyan vedigerînin û tobe dikin, gunehjêbir e.

**26-** Mafê xizm û xizan û rêwiyan bide û li cihê nerewa û nepêdivî destbelaviyê neke.

**27-** Bêguman ên destbelav dost û birayên şeytên in. Şeytan jî li biwara Xwedayê xwe de zêde nankor bû.

وَلَقَدْ صَرَّفْنَا فِي هٰذَا الْقُرْاٰنِ لِلنَّاسِ مِنْ كُلِّ مَثَلٍ وَكَانَ
الْاِنْسَانُ اَكْثَرَ شَيْءٍ جَدَلًا ﴿٥٤﴾ وَمَا مَنَعَ النَّاسَ اَنْ يُؤْمِنُوا
اِذْ جَاءَهُمُ الْهُدٰى وَيَسْتَغْفِرُوا رَبَّهُمْ اِلَّا اَنْ تَأْتِيَهُمْ سُنَّةُ
الْاَوَّلِينَ اَوْ يَأْتِيَهُمُ الْعَذَابُ قُبُلًا ﴿٥٥﴾ وَمَا نُرْسِلُ الْمُرْسَلِينَ
اِلَّا مُبَشِّرِينَ وَمُنْذِرِينَ وَيُجَادِلُ الَّذِينَ كَفَرُوا بِالْبَاطِلِ
لِيُدْحِضُوا بِهِ الْحَقَّ وَاتَّخَذُوا اٰيَاتِي وَمَا اُنْذِرُوا هُزُوًا ﴿٥٦﴾
وَمَنْ اَظْلَمُ مِمَّنْ ذُكِّرَ بِاٰيَاتِ رَبِّهِ فَاَعْرَضَ عَنْهَا وَنَسِيَ
مَا قَدَّمَتْ يَدَاهُ اِنَّا جَعَلْنَا عَلٰى قُلُوبِهِمْ اَكِنَّةً اَنْ يَفْقَهُوهُ
وَفِي اٰذَانِهِمْ وَقْرًا وَاِنْ تَدْعُهُمْ اِلَى الْهُدٰى فَلَنْ يَهْتَدُوا اِذًا
اَبَدًا ﴿٥٧﴾ وَرَبُّكَ الْغَفُورُ ذُو الرَّحْمَةِ لَوْ يُؤَاخِذُهُمْ بِمَا كَسَبُوا
لَعَجَّلَ لَهُمُ الْعَذَابَ بَلْ لَهُمْ مَوْعِدٌ لَنْ يَجِدُوا مِنْ دُونِهِ
مَوْئِلًا ﴿٥٨﴾ وَتِلْكَ الْقُرٰى اَهْلَكْنَاهُمْ لَمَّا ظَلَمُوا وَجَعَلْنَا
لِمَهْلِكِهِمْ مَوْعِدًا ﴿٥٩﴾ وَاِذْ قَالَ مُوسٰى لِفَتٰيهُ لَا اَبْرَحُ حَتّٰى
اَبْلُغَ مَجْمَعَ الْبَحْرَيْنِ اَوْ اَمْضِيَ حُقُبًا ﴿٦٠﴾ فَلَمَّا بَلَغَا مَجْمَعَ
بَيْنِهِمَا نَسِيَا حُوتَهُمَا فَاتَّخَذَ سَبِيلَهُ فِي الْبَحْرِ سَرَبًا ﴿٦١﴾

**54**- Bi rastî Me di vê Quranê de ji bo mirovan her texlîtên mînakan aşkera kirine (da ku îbret bigirin). Lê belê însan ji her tiştî pirtir ji miqersiyê hez dike.

**55**- Piştî ku Pêxember û Quran ji wan re hat, ji bilî ya ku bi serê yên berî wan de hatî, yan jî ji nişka ve ku ew tûşî ezabê bibin pê ve, ma çi tiştî ew ji baweriyê û ji daxwaza lêborîna (gunehên xwe) ji Xwedayê wan, ew dane paş?!

**56**- Em pêxemberan bes wek mizgînber û hişyarker dişînin. Ew ên ku kafir bûne jî têdikoşin da ku heqiyê bi batilî ji holê rakin û wan ayetên me û ew ezabê ku ew pê hatibûn tirsandin, pêkenok girtin.

**57**- Ma ji wî kesê ku bi ayetên Xwedayê xwe hatibe hişyarkirin, vêca berê xwe ji wan vegerîne û gunehên ku bi destên xwe kirin ji bîr bike, zalimtir kî hey e? Bêguman Me perdeyek daniye ser dilên wan da ku Quranê fehm nekin û Me kerîtiyek xistiye guhên wan (da ku heqiyê nebihîzin). Eger tu wan gazî riya rast bikî jî ew tu carî rasterê nabin.

**58**- Xwedayê te, gunehjêbir û xwedanmerhemet e. Eger ji ber gunehên ku ew dikin, pê re pê re (li cîhanê) ew ceza bikirina, dê bi lez ezab bidaya wan. Lê belê ji wan re civanekî diyar heye. (Dema ew civan hat) êdî ew ê ji bo xwe stargehekê nebînin (ku ji ezabê qiyametê xelas bibin).

**59**- Xelkên wan welatan dema wan zilim kir (û îman neanî) Me ew helak kirin, Me ji bo helakkirina wan civanekî aşkera danî (vêca tiştê bi serê wan de hatî dê bi serê we de jî bê).

**60**- Dema Mûsa ji (şagirtê) xwe (Yûşe'ê kurê Nûn) re got: Ez nawestim û ranawestim heyanî negihîjim cihê ku her du derya digihên hev, an jî ez ê demeke dirêj bi rê ve herim.

**61**- Çi dema her du gihîştin wî cihê ku her du derya digihan hev, wan masiyê xwe ji bîr kir. Masî, di behrê de ber bi qulekê ve rê girt û çû.

Li gorî rîwayetan, Mûsa bi ciwanekî ji lêzimên xwe ku Yûşe' kurê Nûn e, derdikeve vê rêwîtiyê da ku wî evdê Salih ê ku Xwedê jê re gotibû; ew ji te zanatir e, bibîne. Li nik wan di bistikê de masiyekî biraştî hebû. Ev masî bi qudreta Xwedê li ku sax bibe, vêca xwe bavêje behrê û here, ev ew nîşan e ku Evdê Salih li wir e.

فَلَمَّا جَاوَزَا قَالَ لِفَتٰيهُ اٰتِنَا غَدَٓاءَنَا لَقَدْ لَقٖينَا مِنْ سَفَرِنَا هٰذَا نَصَبًا
﴿٦٢﴾ قَالَ اَرَاَيْتَ اِذْ اَوَيْنَٓا اِلَى الصَّخْرَةِ فَاِنّٖى نَسٖيتُ الْحُوتَ
وَمَٓا اَنْسَانٖيهُ اِلَّا الشَّيْطَانُ اَنْ اَذْكُرَهُ وَاتَّخَذَ سَبٖيلَهُ فِى الْبَحْرِ
عَجَبًا ﴿٦٣﴾ قَالَ ذٰلِكَ مَا كُنَّا نَبْغِ فَارْتَدَّا عَلٰٓى اٰثَارِهِمَا قَصَصًا
﴿٦٤﴾ فَوَجَدَا عَبْدًا مِنْ عِبَادِنَٓا اٰتَيْنَاهُ رَحْمَةً مِنْ عِنْدِنَا وَعَلَّمْنَاهُ
مِنْ لَدُنَّا عِلْمًا ﴿٦٥﴾ قَالَ لَهُ مُوسٰى هَلْ اَتَّبِعُكَ عَلٰٓى اَنْ تُعَلِّمَنِ مِمَّا
عُلِّمْتَ رُشْدًا ﴿٦٦﴾ قَالَ اِنَّكَ لَنْ تَسْتَطٖيعَ مَعِىَ صَبْرًا ﴿٦٧﴾ وَكَيْفَ
تَصْبِرُ عَلٰى مَا لَمْ تُحِطْ بِهٖ خُبْرًا ﴿٦٨﴾ قَالَ سَتَجِدُنٖٓى اِنْ شَٓاءَ اللّٰهُ
صَابِرًا وَلَٓا اَعْصٖى لَكَ اَمْرًا ﴿٦٩﴾ قَالَ فَاِنِ اتَّبَعْتَنٖى فَلَا تَسْـَٔلْنٖى
عَنْ شَىْءٍ حَتّٰٓى اُحْدِثَ لَكَ مِنْهُ ذِكْرًا ﴿٧٠﴾ فَانْطَلَقَا حَتّٰٓى اِذَا
رَكِبَا فِى السَّفٖينَةِ خَرَقَهَا قَالَ اَخَرَقْتَهَا لِتُغْرِقَ اَهْلَهَا لَقَدْ
جِئْتَ شَيْـًٔا اِمْرًا ﴿٧١﴾ قَالَ اَلَمْ اَقُلْ اِنَّكَ لَنْ تَسْتَطٖيعَ مَعِىَ
صَبْرًا ﴿٧٢﴾ قَالَ لَا تُؤَاخِذْنٖى بِمَا نَسٖيتُ وَلَا تُرْهِقْنٖى مِنْ اَمْرٖى
عُسْرًا ﴿٧٣﴾ فَانْطَلَقَا حَتّٰٓى اِذَا لَقِيَا غُلَامًا فَقَتَلَهُ قَالَ اَقَتَلْتَ
نَفْسًا زَكِيَّةً بِغَيْرِ نَفْسٍ لَقَدْ جِئْتَ شَيْـًٔا نُكْرًا ﴿٧٤﴾

قَالَ

**62**- Çi dema her du (ji wî cihê hevdîtinê) derbas bûn û çûn, Mûsa ji şagirtê xwe re got: Taştiya me ji me re bîne. Bi rastî vê rêwîtiya me em gelekî westandin.

**63**- Şagirtî got: Ma te dît, dema me xwe avêt ber wî zinarî min masî (li wir) ji bîr kir. Bes pelîdî bi min da jibîrkirin ku ez qiseya masî ji te re bibêjim. Masî di behrê de riya xwe girt û çû, ev rewşeke ecêb bû.

Di vê ayeta pîroz de tişta ku însên şaş û metel dihêle ev e: Di bistikê de masiyekî biraştî digel şagirtê Mûsa bûye û di encama mûcîzeyekê de, zindî bûye, xwe avêtiye deryayê û çûye. Cihê ku ev mucîze lê qewimiye ew cih e ku Evdê Salih lê bûye. Ji ber ku Mûsa bi vê zanîbû ji hevalê xwe re gotibû: Cihê ku masî lê bi ruh bû û çû behrê di bîra min bîne. Lêbelê di wê kêlîka ku wan ji bo bêhnberdanê xwe dabûn ber zinarekî û kêliyeke ku Mûsa di xew re çûbû, masî bi ruh bûbû û xwe avêtibû deryayê. Şagirtê wî jî ji bîr kiribû ku vê ji Mûsa re bibêje. Piştî hinekî din jî çûn, gava Mûsa qala xwarinê kir, hate bîra hevalê wî ku masî xwe avêtiye behrê.

**64**- Mûsa got: Ha ev bû ya ku em lê digeriyan. Di cih de li pey şopa xwe vegeriyan (û hatin cem zinêr).

**65**- Her duyan ebdek ji îbadên me dîtin ku Me ji cem xwe rehmetek dabû wî û ji nik xwe Me ew hînî zanîneke taybet kiribû.

**66**- Mûsa jê re got: Ma ez digel te bêm da ku wek rêber tu wê zanîna ku ji te re hatiye dayîn, fêrî min jî bikî?

**67**- (Evdê Salih jê re) Got: Bi rastî tu dê nikaribî digel min xwe ragirî.

**68**- Ma çawa tu dê li hemberî zanîneke ku di rastiya wê tu nagihîjî sebrê bikêşî?

**69**- (Mûsa jê re) Got: Înşaellah tu dê min sebirkêş bibînî û ez ê li ber fermana te jî ranebim.

**70**- (Evdê Salih jê re) Got: Eger tu bidî pey min, hetanî ku ez ji te re rastiya wê nebêjim, tu bi xwe der barê tu tiştî de ji min pirsê neke.

**71**- Li ser vê (şertê ku gotî) her du bi rê ve çûn. Paşê, dema her du siwarî keştiyê bûn, wî keştî qul kir. Vêca Mûsa jê re got: Ma te keştî qul kir ji bo ku tu xelkê tê de bixeniqîne? Bi rastî te karekî kirêt kir!

**72**- (Evdê Salih jê re) Got: Ma min ji te re negotibû ku tu yê nikaribî bi min re xwe ragirî?

**73**- Mûsa (jê re) got: Ji ber tiştê ku min ji bîr kiriye li min negire û di karê min de ji min re zorê derneyîne.

**74**- Dîsa her du bi rê ve çûn. Paşê, dema rastî zarokekî hatin, evdê salih di cih de ew (zarok) kuşt. Vêca Mûsa jê re got: Te canekî pak kuşt bêyî ku wî canek kuştibe! Bi rastî te tiştekî nerind kir!

قَالَ اَلَمْ اَقُلْ لَكَ اِنَّكَ لَنْ تَسْتَطٖيعَ مَعِىَ صَبْرًا ﴿٧٥﴾ قَالَ اِنْ
سَاَلْتُكَ عَنْ شَيْءٍ بَعْدَهَا فَلَا تُصَاحِبْنٖى قَدْ بَلَغْتَ مِنْ لَدُنّٖى
عُذْرًا ﴿٧٦﴾ فَانْطَلَقَا حَتّٰى اِذَا اَتَيَا اَهْلَ قَرْيَةٍ اسْتَطْعَمَا اَهْلَهَا
فَاَبَوْا اَنْ يُضَيِّفُوهُمَا فَوَجَدَا فٖيهَا جِدَارًا يُرٖيدُ اَنْ يَنْقَضَّ
فَاَقَامَهُ قَالَ لَوْ شِئْتَ لَتَّخَذْتَ عَلَيْهِ اَجْرًا ﴿٧٧﴾ قَالَ هٰذَا فِرَاقُ
بَيْنٖى وَبَيْنِكَ سَاُنَبِّئُكَ بِتَاْوٖيلِ مَا لَمْ تَسْتَطِعْ عَلَيْهِ صَبْرًا ﴿٧٨﴾
اَمَّا السَّفٖينَةُ فَكَانَتْ لِمَسَاكٖينَ يَعْمَلُونَ فِى الْبَحْرِ فَاَرَدْتُ
اَنْ اَعٖيبَهَا وَكَانَ وَرَاءَهُمْ مَلِكٌ يَاْخُذُ كُلَّ سَفٖينَةٍ غَصْبًا ﴿٧٩﴾
وَاَمَّا الْغُلَامُ فَكَانَ اَبَوَاهُ مُؤْمِنَيْنِ فَخَشٖينَا اَنْ يُرْهِقَهُمَا طُغْيَانًا
وَكُفْرًا ﴿٨٠﴾ فَاَرَدْنَا اَنْ يُبْدِلَهُمَا رَبُّهُمَا خَيْرًا مِنْهُ زَكٰوةً وَاَقْرَبَ
رُحْمًا ﴿٨١﴾ وَاَمَّا الْجِدَارُ فَكَانَ لِغُلَامَيْنِ يَتٖيمَيْنِ فِى الْمَدٖينَةِ
وَكَانَ تَحْتَهُ كَنْزٌ لَهُمَا وَكَانَ اَبُوهُمَا صَالِحًا فَاَرَادَ رَبُّكَ اَنْ
يَبْلُغَا اَشُدَّهُمَا وَيَسْتَخْرِجَا كَنْزَهُمَا رَحْمَةً مِنْ رَبِّكَ وَمَا
فَعَلْتُهُ عَنْ اَمْرٖى ذٰلِكَ تَاْوٖيلُ مَا لَمْ تَسْطِعْ عَلَيْهِ صَبْرًا ﴿٨٢﴾
وَيَسْـَٔلُونَكَ عَنْ ذِى الْقَرْنَيْنِ قُلْ سَاَتْلُوا عَلَيْكُمْ مِنْهُ ذِكْرًا ﴿٨٣﴾

**75**- (Evdê Salih jê re) Got: Ma min ji te re negotibû ku tu yê nikaribî bi min re sebrê bikêşî?

**76**- Mûsa (ji ber vê yekê) Got: Eger piştî vê carê ez tiştekî ji te bipirsim, êdî min ji hevaltiya xwe biavêje. Bi rastî ji aliyê min ve tu gihîştî lêborîna dawîn (êdî rûyê min nagire ku ez lêborînê ji te bixwazim).

**77**- Dîsa her du bi rê ve çûn heyanî gihîştin xelkê gundekî, ji wan xwarin xwestin. Vêca li ser vê yekê xelkê gund bi mêvantî ew venehewandin. Di vê navê de li wê deverê rastî dîwarekî hatin ku xwar bûbû û dikir biherife. Evdê Salih di cih de ew rast kir. Êdî Mûsa jê re got: Eger te bixwesta teqez te dê ji ber vê heqdestê xwe bistanda.

**78**- (Evdê salih) got: Ha ev, ew kêliya jihevcudabûna min û te ye. Vêga ez ê şîroveya wan tiştên ku te nikarîbû li hemberî wan xwe ragirta ji te re bibêjim.

**79**- Herçî ku keştî bû, ew a çend xizanan bû ku ew di deryayê de dixebitîn. Min xwest wê eybdar bikim, (lewra;) li pêşiya wan hukimdarek hebû ku her keştî(ya saxlem) bi zorê ji wan distand.

**80**- Herçî ku zarok bû (ew di zanîna Xwedê Teala de kafir bû, û) dê û bavên wî mirovên bawermend bûn, vêca em tirsiyan (ku zarok) wan noqî batil û kufrê bike.

**81**- Vêca me xwest ku Xwedayê wan di şûna wî de yekî ji wî çêtir û li ser wan dilovantir, bide wan.

**82**- Herçî ku dîwar bû, ew di bajêr de yê du zarokên sêwî bû û di bin de gencîneyeke wan hebû û bavê wan jî mirovekî qencîkar bû. Vêca Xwedayê wan xwest ku ew her du zarok bigihîjin çaxê xurtiya xwe û gencîneya xwe derînin. Ev rehmetek bû ji Xwedayê te û min ev jî ne ji ber xwe ve kirin. Ha ev e şîroveya wan tiştên ku te nikaribû li hemberî wan xwe ragirta.

**83**- (Ya Muhemmed!) Cihû ji te pirsa Zulqerneyn dikin. (Ji wan re) Bibêje: Ez ê ji we re der heqê wî de wehyê bixwînim.

اِنَّا مَكَّنَّا لَهُ فِى الْاَرْضِ وَاٰتَيْنَاهُ مِنْ كُلِّ شَيْءٍ سَبَبًا ﴿٨٤﴾ فَاَتْبَعَ
سَبَبًا ﴿٨٥﴾ حَتّٰى اِذَا بَلَغَ مَغْرِبَ الشَّمْسِ وَجَدَهَا تَغْرُبُ فى عَيْنٍ
حَمِئَةٍ وَوَجَدَ عِنْدَهَا قَوْمًا قُلْنَا يَا ذَا الْقَرْنَيْنِ اِمَّا اَنْ تُعَذِّبَ
وَاِمَّا اَنْ تَتَّخِذَ فيهِمْ حُسْنًا ﴿٨٦﴾ قَالَ اَمَّا مَنْ ظَلَمَ فَسَوْفَ نُعَذِّبُهُ
ثُمَّ يُرَدُّ اِلٰى رَبِّه فَيُعَذِّبُهُ عَذَابًا نُكْرًا ﴿٨٧﴾ وَاَمَّا مَنْ اٰمَنَ وَعَمِلَ
صَالِحًا فَلَهُ جَزَاءًۨ الْحُسْنٰى وَسَنَقُولُ لَهُ مِنْ اَمْرِنَا يُسْرًا ﴿٨٨﴾ ثُمَّ
اَتْبَعَ سَبَبًا ﴿٨٩﴾ حَتّٰى اِذَا بَلَغَ مَطْلِعَ الشَّمْسِ وَجَدَهَا تَطْلُعُ عَلٰى قَوْمٍ
لَمْ نَجْعَلْ لَهُمْ مِنْ دُونِهَا سِتْرًا ﴿٩٠﴾ كَذٰلِكَ وَقَدْ اَحَطْنَا بِمَا لَدَيْهِ
خُبْرًا ﴿٩١﴾ ثُمَّ اَتْبَعَ سَبَبًا ﴿٩٢﴾ حَتّٰى اِذَا بَلَغَ بَيْنَ السَّدَّيْنِ وَجَدَ مِنْ دُونِهِمَا
قَوْمًا لَا يَكَادُونَ يَفْقَهُونَ قَوْلًا ﴿٩٣﴾ قَالُوا يَا ذَا الْقَرْنَيْنِ اِنَّ يَأْجُوجَ
وَمَأْجُوجَ مُفْسِدُونَ فِى الْاَرْضِ فَهَلْ نَجْعَلُ لَكَ خَرْجًا عَلٰى اَنْ تَجْعَلَ
بَيْنَنَا وَبَيْنَهُمْ سَدًّا ﴿٩٤﴾ قَالَ مَا مَكَّنّى فيهِ رَبّى خَيْرٌ فَاَعينُونى بِقُوَّةٍ
اَجْعَلْ بَيْنَكُمْ وَبَيْنَهُمْ رَدْمًا ﴿٩٥﴾ اٰتُونى زُبَرَ الْحَديدِ حَتّٰى اِذَا سَاوٰى
بَيْنَ الصَّدَفَيْنِ قَالَ انْفُخُوا حَتّٰى اِذَا جَعَلَهُ نَارًا قَالَ اٰتُونى اُفْرِغْ
عَلَيْهِ قِطْرًا ﴿٩٦﴾ فَمَا اسْطَاعُوا اَنْ يَظْهَرُوهُ وَمَا اسْتَطَاعُوا لَهُ نَقْبًا ﴿٩٧﴾

قَالَ

**84**- Bêguman me ew li ser rûyê erdê kire xwedanderfet û me ji her tiştî re sedem û navgînek dayê (da ku xwe bigihînê).

**85**- Vêca ew jî ket pey wan sedeman.

**86**- Heyanî ew gihîşt wî cihê ku roj lê diçû ava (li gorî dîtina çavan) dît ku va ye ew di kaniyeke xwedan heriyeke reş de diçe ava û li wê derê xelkekî (kafir) dît. Me jê re got: Ey Zulqerneyn! Ji te re heye ku tu (bi sebunet kufra wan) ezab bidî wan, an jî der barê wan de ya spehî (esas) bigirî (wan gazî îmanê bikî).

**87**- Zulqerneyn got: Herçî ku ew ê (bi muşrikiyê) zilmê bike, em ê (bi kuştinê) wî ceza bikin, piştre ew ê li Xwedayê xwe bê vegerandin; ji bo vê Xwedê jî dê ezabekî dijwar bide wî.

**88**- (Xwedê Teala got:) Herçî ew kesê ku bawerî bîne û kar û kiryarên qenc bike, vêca jê re xelata herî spehî (bihişt) heye û ji fermana xwe, em ê ya (rihet û) hêsan jê re bibêjin.

**89**- Piştre dîsa ew kete pey wan sedem û derfetan.

**90**- Heta gihîşte cihekî ku roj lê hiltê, wî dît ku wa ye roj li ser miletekî wisa hiltê ku me ji rojê pê ve tu starek (cil û avahiyek) nedabû wan (ku wan binixumîne).

**91**- Her wiha û teqez me bi her tiştî (ya dihate kirin) agahî hebû.

**92**- Piştre dîsa ew kete pey wan sedem û derfetan.

**93**- Paşê dema gihîşt nava du çiyan, li wir miletek dît ku tu ziman nedizanîn (ji bilî zimanê xwe).

**94**- Wan got: Ey Zulqerneyn! Bi rastî li vî welatî yacûc û macûc xerabiyê dikin. Vêca ma eger em ji malê xwe heqdestekî bidin te da ku di navbera me û wan de tu sûrekê çêkî, ma tu ji vê re çi dibêji?

**95**- Zulqerneyn got: Ew mal, milk û hêza ku Xwedayê min daye min ji wê heqdesta ku hûn bidine min çêtir e. Hûn ji aliyê hêzê ve arîkariya min bikin da ku ez di navbera we û wan de sûreke asê çêkim.

**96**- Parçeyên hesin ji min re bînin, (parçeyên hesin danîn ser hev) heta navbera her du çiyan misêwayî hev bû. (Zulqerneyn ji wan re) got: Pif bikinê (û agir geş bikin! Wan jî agir xweş kir) heyanî ku hesin bû agir. (Zulqerneyn) got: Ji min re sifrê heliyayî bînin da ku birêjim serê.

**97**- Êdî (yacûc û macûcan) nekarîn ji wê bibihurin û ne jî karîn wê qul bikin.

قَالَ هٰذَا رَحْمَةٌ مِنْ رَبّ۪ي فَاِذَا جَٓاءَ وَعْدُ رَبّ۪ي جَعَلَهُ دَكَّٓاءَ وَكَانَ وَعْدُ
رَبّ۪ي حَقًّا ٩٨ وَتَرَكْنَا بَعْضَهُمْ يَوْمَئِذٍ يَمُوجُ ف۪ي بَعْضٍ وَنُفِخَ فِي الصُّورِ
فَجَمَعْنَاهُمْ جَمْعًا ٩٩ وَعَرَضْنَا جَهَنَّمَ يَوْمَئِذٍ لِلْكَافِر۪ينَ عَرْضًا ١٠٠
اَلَّذ۪ينَ كَانَتْ اَعْيُنُهُمْ ف۪ي غِطَٓاءٍ عَنْ ذِكْر۪ي وَكَانُوا لَا يَسْتَط۪يعُونَ
سَمْعًا ١٠١ اَفَحَسِبَ الَّذ۪ينَ كَفَرُٓوا اَنْ يَتَّخِذُوا عِبَاد۪ي مِنْ دُون۪ٓي اَوْلِيَٓاءَ
اِنَّٓا اَعْتَدْنَا جَهَنَّمَ لِلْكَافِر۪ينَ نُزُلًا ١٠٢ قُلْ هَلْ نُنَبِّئُكُمْ بِالْاَخْسَر۪ينَ
اَعْمَالًا ١٠٣ اَلَّذ۪ينَ ضَلَّ سَعْيُهُمْ فِي الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا وَهُمْ يَحْسَبُونَ
اَنَّهُمْ يُحْسِنُونَ صُنْعًا ١٠٤ اُو۬لٰٓئِكَ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا بِاٰيَاتِ رَبِّهِمْ وَلِقَٓائِه۪
فَحَبِطَتْ اَعْمَالُهُمْ فَلَا نُق۪يمُ لَهُمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ وَزْنًا ١٠٥ ذٰلِكَ جَزَٓاؤُ۬هُمْ
جَهَنَّمُ بِمَا كَفَرُوا وَاتَّخَذُٓوا اٰيَات۪ي وَرُسُل۪ي هُزُوًا ١٠٦ اِنَّ الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا
وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ كَانَتْ لَهُمْ جَنَّاتُ الْفِرْدَوْسِ نُزُلًا ١٠٧ خَالِد۪ينَ
ف۪يهَا لَا يَبْغُونَ عَنْهَا حِوَلًا ١٠٨ قُلْ لَوْ كَانَ الْبَحْرُ مِدَادًا لِكَلِمَاتِ رَبّ۪ي
لَنَفِدَ الْبَحْرُ قَبْلَ اَنْ تَنْفَدَ كَلِمَاتُ رَبّ۪ي وَلَوْ جِئْنَا بِمِثْلِه۪ مَدَدًا ١٠٩ قُلْ
اِنَّمَٓا اَنَا۬ بَشَرٌ مِثْلُكُمْ يُوحٰٓى اِلَيَّ اَنَّمَٓا اِلٰهُكُمْ اِلٰهٌ وَاحِدٌ فَمَنْ كَانَ
يَرْجُوا لِقَٓاءَ رَبِّه۪ فَلْيَعْمَلْ عَمَلًا صَالِحًا وَلَا يُشْرِكْ بِعِبَادَةِ رَبِّه۪ٓ اَحَدًا ١١٠

**98**- Zulqerneynî got: Ev (sûra ha) rehmetek ji cem Xwedayê min e. Lê belê dema peymana Xwedayê min (bi derketina yacûc û macûcan) hat, ew ê vê rast û hilû bike. Bêguman peymana Xwedayê min heq e (teqez ew ê bi cih bê).

**99**- Wê rojê em dev ji wan berdidin (tu dinêrî ku) hin ji wan li hinan dikevin û dikeyin. Piştî wê (tu dinêrî ku) di sûrê de hate pifkirin, vêca me ew li hev kom kirine.

**100**- Di wê rojê de em ê dojehê ji bo kafiran berçav bikin.

**101**- Ew kafirên ku çavên wan der barê Qur'ana min de girtî û perdekirî bûn û wan nikarîbûn guhdariya (heqiyê) bikin.

**102**- Erê, ma ew ên kafir bûne hizir dikin ku ew dikarin ji bilî min, bendeyên min ji xwe re bikin dost û piştevan (da ku ew feydeyê bidin wan)? Bêguman Me dojeh ji bo kafiran kiriye wargeh.

**103**- (Ya Muhemmed!) Bibêje: Ma em ji we re, ew ên ku ji hêla kar ve herî ziyan kirine, nebêjin?

**104**- Ew ên ku kar û xebata wan li jiyana cîhanê pûç bûye. Hal ev e wan hizir dikir ku ew karekî qenc dikin.

**105**- Ha ev, ew in ku wan ayetên Xwedayê xwe û çûna hizûra wî mandel kirin, vêca xebata wan pûç bûye. Em roja qiyametê ji bo wan tu qîmetekê nagirin.

**106**- Cezayê wan dojeh e, bi sedema ku wan bawerî neanî, tinazên xwe bi ayet û pêxemberên min kirin.

**107**- Bêguman ew ên ku bawerî anîn û karên qenc kirin, ji wan re bihiştên Firdewsê, cih û wargeh in.

**108**- Ew dê her û her tê de bin û ew naxwazin jê derkevin.

**109**- Bibêje: Eger ji bo peyvên Xwedayê min derya hibir bûna û me ew qasî din jî lê zêde bikira, beriya ku peyvên Xwedayê min biqedin ew ê derya biqediyana.

**110**- Bibêje: Bêguman ez bes wekî we mirovek im. (Lê ev heye), peyam ji bo min hatiye hinartin (ku ez ji we re bibêjim:) Xwedayê we her Xwedayekî bi tenê ye. Êdî kesê ku xelata Xwedayê xwe hêvî bike û ji ezabê wî bitirse, bila karekî qenc bike û di îbadeta xwe de qet tiştekî ji Xwedayê xwe re neke hevpişk!



## SÛREYÊ MERYEM

Sûreyê Meryemê, 98 (not û heşt) ayet e. Li Mekkê daketiye. Ev sûre, digel dabaşên din jî ji ber ku bi taybetî behsa Meryemê û anîna wê ya Îsa ya cîhanê dike jê re Sûreyê Meryemê hatiye gotin.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

1- Kaf, Ha, Ya, 'Eyn, Sad.

2- Ev behsa dilovaniya Xwedayê te ye, ya ku bi bendeyê xwe Zekeriya re kirîye.

3- Dema Zekeriya bi dengekî nizm li ber Xwedayê xwe geriya.

4- Got: Xwedayê min! Hestiyê min lawaz bûn (ji ixtiyarî hêz û taqet nema), mûyên li serê min spî bûn. Xwedayê min! Ez bi duayên ku min ji te (kirin) hîç bêhêvî nebûm.

5- Bi rastî ez piştî xwe ji yên ku bikevin ser kar endîşe dikim (ku ew dîn berevajî nîşan bidin). Pîreka min jî zarokan nayîne, vêca ji nik xwe mîratxwerekî (kurekî) bide min.

6- Da ku ew bibe mîratxwerê min û mîratxwerê mala Yaqûb jî. Xwedayê min, wî bike layîqê rizaya xwe!

7- (Xwedê Teala jê re got:) Ey Zekeriya! Em mizgîniya kurekî wisa didin te ku navê wî Yehya ye ku beriya wî me tu kes bi vî navî bi nav nekiriye.

8- ( Zekeriya) Got: Xwedayê min, dê çawa kur ji bo min çêbe, pîreka min zarokan nayîne û ez jî gihame dawiya kalîtiyê?!

9- Xwedê Teala jê re got: Belê ya te gotî rast e, lê Xwedayê te dibêje: Ew (dayîna zarokî ji bo te) teqez ji bo min hêsan e. Bêguman min tu berê afirand û tu qet tune bûyî.

10- Zekeriya got: Xwedayê min! (Der barê bi hemlebûna jina min de) nîşanekê bide min. Xwedê Teala jê re got: Nîşana te ev e, tu sê şev (û sê rojan) bi mirovan re nikaribî bipeyivî, digel ku tu ne nexweş bî jî.

11- Li ser vê Zekeriya ji mîhraba mizgeftê derkete pêşberî gelê xwe; bi îşaretekê ji wan re got: Sibeh û êvaran Xwedê ji her kêmasiyê pak bidêrin.

يَا يَحْيٰى خُذِ الْكِتَابَ بِقُوَّةٍ وَاٰتَيْنَاهُ الْحُكْمَ صَبِيًّا ﴿١٢﴾ وَحَنَانًا
مِنْ لَدُنَّا وَزَكٰوةً وَكَانَ تَقِيًّا ﴿١٣﴾ وَبَرًّا بِوَالِدَيْهِ وَلَمْ يَكُنْ جَبَّارًا
عَصِيًّا ﴿١٤﴾ وَسَلَامٌ عَلَيْهِ يَوْمَ وُلِدَ وَيَوْمَ يَمُوتُ وَيَوْمَ يُبْعَثُ
حَيًّا ﴿١٥﴾ وَاذْكُرْ فِى الْكِتَابِ مَرْيَمَ اِذِ انْتَبَذَتْ مِنْ اَهْلِهَا
مَكَانًا شَرْقِيًّا ﴿١٦﴾ فَاتَّخَذَتْ مِنْ دُونِهِمْ حِجَابًا فَاَرْسَلْنَا
اِلَيْهَا رُوحَنَا فَتَمَثَّلَ لَهَا بَشَرًا سَوِيًّا ﴿١٧﴾ قَالَتْ اِنّ۪ٓى اَعُوذُ
بِالرَّحْمٰنِ مِنْكَ اِنْ كُنْتَ تَقِيًّا ﴿١٨﴾ قَالَ اِنَّمَٓا اَنَا رَسُولُ
رَبِّكِ لِاَهَبَ لَكِ غُلَامًا زَكِيًّا ﴿١٩﴾ قَالَتْ اَنّٰى يَكُونُ لى
غُلَامٌ وَلَمْ يَمْسَسْنِى بَشَرٌ وَلَمْ اَكُ بَغِيًّا ﴿٢٠﴾ قَالَ كَذٰلِكِ
قَالَ رَبُّكِ هُوَ عَلَىَّ هَيِّنٌ وَلِنَجْعَلَهُٓ اٰيَةً لِلنَّاسِ وَرَحْمَةً مِنَّا
وَكَانَ اَمْرًا مَقْضِيًّا ﴿٢١﴾ فَحَمَلَتْهُ فَانْتَبَذَتْ بِه۪ مَكَانًا
قَصِيًّا ﴿٢٢﴾ فَاَجَٓاءَهَا الْمَخَاضُ اِلٰى جِذْعِ النَّخْلَةِ قَالَتْ
يَا لَيْتَنِى مِتُّ قَبْلَ هٰذَا وَكُنْتُ نَسْيًا مَنْسِيًّا ﴿٢٣﴾ فَنَادٰيهَا
مِنْ تَحْتِهَٓا اَلَّا تَحْزَنِى قَدْ جَعَلَ رَبُّكِ تَحْتَكِ سَرِيًّا ﴿٢٤﴾
وَهُزّ۪ٓى اِلَيْكِ بِجِذْعِ النَّخْلَةِ تُسَاقِطْ عَلَيْكِ رُطَبًا جَنِيًّا ﴿٢٥﴾

12- (Çi dema Yehya ji dayika xwe bû, mezin bû û giha wî temenê ku ferman lê bê kirin, Me jê re got): Ey Yehya! Tewratê bi hêz bigire û hê bi zarokî me hîkmet dabû wî.

13- Me ji cem xwe dilnermî û pakî dayê û ew mirovekî teqwadar bû.

14- Ji dê û bavê xwe re qenc bû û ew ne xwemezindêrekî neguhdar bû.

15- Silav li ser be; roja ew bûyî, roja ew bimire û roja ku ew ji gorê bê vejandin!

16-(Ya Muhemmed!) Di vê Quranê de behsa Meryemê bike; dema ew ji malbata xwe vederbû, (ji bo ku îbadeta Xwedayê xwe bike), rexê rojhilatê (mizgefta Qudsê) ji xwe re kire wargeh.

17- Êdî Meryemê di nav xwe û wan de perdeyek kişand. Me Cebraîl şande cem û xwe jê re kire şeklê însanekî tekûz.

18- Meryemê jê re got: Ez xwe bi Xwedayê ku rehman e ji te diparêzim! Eger tu bi rastî mirovekî xwedantirs bî (nêzîkî min nebe).

19- Cibraîl jê re got: Ez bes qasidê Xwedayê te me (û ji te re hatime) da ku kurekî pak bidime te.

20- Meryemê jê re got: Dê çawa kur ji min re çêbe? Hal ev e ku tu kesî dest nedaye min û ez ne dawpîs im jî.

21- Cebraîl jê re got: Fermana Xwedê wisa ye (bêyî destdan zarok dê ji te re çêbibe). Xwedayê te got: Ev ji min re hêsan e û da ku em hatina wî ji bo mirovan, ji cem xwe bikin nîşan û dilovanî. Ev karekî ku biryara wî hatiye dayîn (û dê her çêbe).

22- Meryem bi Îsa ducan bû. Vêca ji ber vê yekê xwe kişand cihekî (ji malbata xwe) dûr.

23- Êşa zarokçêbûnê berê wê da (ber) dara xurmeyê (da ku xwe pê bigire), got: Xwezî beriya vê (rewşê) ez bimirama, bihatama jibîrkirin û biçûma (û ev nehata serê min)!

24- Vêca (piştî vê xemgîniya wê) (Cebraîl) Ji binê wê darê wiha gazî Meryemê kir: Xemgîn mebe! Xwedayê te, li pêşberî te coyeke avê aniye holê.

25- Dara xurmeyê bi bal xwe ve bihejîne, da ku xurmeyên ter û gihayî bi ser te de biweşin.

فَكُلِى وَاشْرَبِى وَقَرِّى عَيْنًا فَاِمَّا تَرَيِنَّ مِنَ الْبَشَرِ اَحَدًا فَقُولِى
اِنِّى نَذَرْتُ لِلرَّحْمٰنِ صَوْمًا فَلَنْ اُكَلِّمَ الْيَوْمَ اِنْسِيًّا ﴿٢٦﴾ فَاَتَتْ
بِهِ قَوْمَهَا تَحْمِلُهُ قَالُوا يَا مَرْيَمُ لَقَدْ جِئْتِ شَيْـًٔا فَرِيًّا ﴿٢٧﴾
يَٓا اُخْتَ هٰرُونَ مَا كَانَ اَبُوكِ امْرَاَ سَوْءٍ وَمَا كَانَتْ اُمُّكِ بَغِيًّا
﴿٢٨﴾ فَاَشَارَتْ اِلَيْهِ قَالُوا كَيْفَ نُكَلِّمُ مَنْ كَانَ فِى الْمَهْدِ صَبِيًّا
﴿٢٩﴾ قَالَ اِنِّى عَبْدُ اللّٰهِ اٰتٰنِىَ الْكِتَابَ وَجَعَلَنِى نَبِيًّا ﴿٣٠﴾ وَجَعَلَنِى
مُبَارَكًا اَيْنَ مَا كُنْتُ وَاَوْصَانِى بِالصَّلٰوةِ وَالزَّكٰوةِ مَا دُمْتُ حَيًّا
﴿٣١﴾ وَبَرًّا بِوَالِدَتِى وَلَمْ يَجْعَلْنِى جَبَّارًا شَقِيًّا ﴿٣٢﴾ وَالسَّلَامُ
عَلَىَّ يَوْمَ وُلِدْتُ وَيَوْمَ اَمُوتُ وَيَوْمَ اُبْعَثُ حَيًّا ﴿٣٣﴾ ذٰلِكَ
عِيسَى ابْنُ مَرْيَمَ قَوْلَ الْحَقِّ الَّذِى فِيهِ يَمْتَرُونَ ﴿٣٤﴾ مَا كَانَ لِلّٰهِ
اَنْ يَتَّخِذَ مِنْ وَلَدٍ سُبْحَانَهُ اِذَا قَضٰى اَمْرًا فَاِنَّمَا يَقُولُ لَهُ كُنْ
فَيَكُونُ ﴿٣٥﴾ وَاِنَّ اللّٰهَ رَبِّى وَرَبُّكُمْ فَاعْبُدُوهُ هٰذَا صِرَاطٌ
مُسْتَقِيمٌ ﴿٣٦﴾ فَاخْتَلَفَ الْاَحْزَابُ مِنْ بَيْنِهِمْ فَوَيْلٌ لِلَّذِينَ
كَفَرُوا مِنْ مَشْهَدِ يَوْمٍ عَظِيمٍ ﴿٣٧﴾ اَسْمِعْ بِهِمْ وَاَبْصِرْ يَوْمَ
يَاْتُونَنَا لٰكِنِ الظَّالِمُونَ الْيَوْمَ فِى ضَلَالٍ مُبِينٍ ﴿٣٨﴾

حزب

وَاَنْذِرْهُمْ

**26**- Vêca (ji wan xurme û avê) bixwe, vexwe û bila çavên te (bi zarokê te) ronî bibin! Eger tu yekî ji mirovan bibînî, (û pirsa vî kurî ji te bike. Jê re wiha) bibêje: Min, ji Xwedayê rehman re (rojiya) nepeyivînê li xwe nezir kiriye; êdî îro ez ê bi tu kesî re neaxivim.

**27**- Meryemê Îsa hilgirt (da ber pêsîra xwe) û anî cem gelê xwe. Jê re gotin: Ey Meryem! Bi rastî te karekî pir xerab û nebûyî kiriye!

**28**- Ey xweha Harûn! Bavê te mirovekî xerab nebû û dayîka te jî ne pîrekeke dawpîs û nebaş bû.

**29**- Meryemê zarok destnîşan kir (ku ji wî bipirsin). Gotin: Em ê bi zarokekî dergûşê re çawa bipeyivin?

**30**- Zarok wiha got: Ez bendeyê Xwedê me, Xwedê kitêb (Încîl) daye min û ez kirime pêxember.

**31**- Ez li ku dibim bila bibim, Xwedê ez pîroz kirime (bi xêr û bêr kirime) û heta ku ez li jiyanê bim ferman li min kiriye ku nimêj bikim û zekatê bidim.

**32**- (Xwedê li min ferman kiriye) ku li dayika xwe qenciyê bikim û ez nekirime xwemezindêrekî gunehkar.

**33**- Roja ku ez bûm, roja ku ez bimirim û roja ku piştî mirinê ez bême vejandin, silav (ewleyî) her li min be.

**34**- Ha rastiya qiseya Îsayê kurê Meryemê ev e; ew rastiya ku (cihû û fileh) der barê wê de guman dikirin.

**35**- Ne babetê Xwedê ye ku ji xwe re zaroyekî bigire. Xwedê Teala (ji van pûçegotinan) pak û dûr e. Dema ew bixwaze tiştekî bîne rastê, jê re tenê dibêje: "Bibe!" Ew jî di cih de dibe.

**36**- (Îsa pêxember got:) Bêguman Ellah Teala, Xwedayê min û Xwedayê we ye, nexwe îbadeta wî bikin. Ha ev e riya rast û durist.

**37**- Piştre ref û komên îsraîliyan (di heqê Îsa de), di nav xwe de ji hev cuda bûn (û bi hev ketin; hinekan got ku Îsa Xwedê ye, hineke din gotin ku ew kurê Xwedê ye û hinekan jî got ku diya wî bi dawnepakî gunehkarî kirîye). Vêca wax li halê wan kafiran be, ew ên ku ji dîtina wê roja mezin (roja qiyametê) bêbawer in!

**38**- Ew roja ku bên hizûra me, dê çi qenc bibihîzin û bibînin (ya ku bê serê wan)! Lê belê ew sitemkar îro di rêşaşiyeke aşkera de ne.

وَاَنْذِرْهُمْ يَوْمَ الْحَسْرَةِ اِذْ قُضِيَ الْاَمْرُ وَهُمْ ف۪ي غَفْلَةٍ وَهُمْ
لَا يُؤْمِنُونَ ﴿٣٩﴾ اِنَّا نَحْنُ نَرِثُ الْاَرْضَ وَمَنْ عَلَيْهَا وَاِلَيْنَا يُرْجَعُونَ
﴿٤٠﴾ وَاذْكُرْ فِي الْكِتَابِ اِبْرٰه۪يمَ اِنَّهُ كَانَ صِدّ۪يقًا نَبِيًّا ﴿٤١﴾ اِذْ قَالَ
لِاَب۪يهِ يَٓا اَبَتِ لِمَ تَعْبُدُ مَا لَا يَسْمَعُ وَلَا يُبْصِرُ وَلَا يُغْن۪ي عَنْكَ
شَيْـًٔا ﴿٤٢﴾ يَٓا اَبَتِ اِنّ۪ي قَدْ جَٓاءَن۪ي مِنَ الْعِلْمِ مَا لَمْ يَأْتِكَ فَاتَّبِعْن۪ٓي
اَهْدِكَ صِرَاطًا سَوِيًّا ﴿٤٣﴾ يَٓا اَبَتِ لَا تَعْبُدِ الشَّيْطَانَ اِنَّ الشَّيْطَانَ
كَانَ لِلرَّحْمٰنِ عَصِيًّا ﴿٤٤﴾ يَٓا اَبَتِ اِنّ۪ٓي اَخَافُ اَنْ يَمَسَّكَ عَذَابٌ
مِنَ الرَّحْمٰنِ فَتَكُونَ لِلشَّيْطَانِ وَلِيًّا ﴿٤٥﴾ قَالَ اَرَاغِبٌ اَنْتَ عَنْ
اٰلِهَت۪ي يَٓا اِبْرٰه۪يمُ لَئِنْ لَمْ تَنْتَهِ لَاَرْجُمَنَّكَ وَاهْجُرْن۪ي مَلِيًّا ﴿٤٦﴾
قَالَ سَلَامٌ عَلَيْكَ سَاَسْتَغْفِرُ لَكَ رَبّ۪ي اِنَّهُ كَانَ ب۪ي حَفِيًّا ﴿٤٧﴾
وَاَعْتَزِلُكُمْ وَمَا تَدْعُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ وَاَدْعُوا رَبّ۪ي عَسٰٓى اَلَّٓا اَكُونَ
بِدُعَٓاءِ رَبّ۪ي شَقِيًّا ﴿٤٨﴾ فَلَمَّا اعْتَزَلَهُمْ وَمَا يَعْبُدُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ
وَهَبْنَا لَهُٓ اِسْحٰقَ وَيَعْقُوبَ وَكُلًّا جَعَلْنَا نَبِيًّا ﴿٤٩﴾ وَوَهَبْنَا لَهُمْ
مِنْ رَحْمَتِنَا وَجَعَلْنَا لَهُمْ لِسَانَ صِدْقٍ عَلِيًّا ﴿٥٠﴾ وَاذْكُرْ
فِي الْكِتَابِ مُوسٰٓى اِنَّهُ كَانَ مُخْلَصًا وَكَانَ رَسُولًا نَبِيًّا ﴿٥١﴾

**39**- (Ya Muhemmed!) Wan (ji erjengiya ezabê) roja poşmanî û kulan hişyar bike. Roja hesabdîtinê bidawî dibe (roja bihiştî diçine bihiştê û dojehî diçine dojehê), belê ew di nav xefletê de ne û ew baweriyê bi wê (rojê) nayînin.

**40**- Bêguman her em in mîratgirê erdê û mîratgirê çi qas ên li ser erdê jî hene û ew tev li me dê bên vegerandin.

**41**- (Ya Muhemmed!) Ji qewmê xwe re di vê Quranê de behsa serpêhatiya Îbrahîm Pêxember bike, bi rastî ew pêxemberekî pir rastîbêj û rastîdêr bû.

**42**- Dema Îbrahîm ji bavê xwe re got: Bavê mino! Çima tu îbadeta tiştekî wisa dikî ku ew nabihîze, nabîne û hîç nikare tu feydeyê jî bide te?

**43**- Bavê mino! Bêguman zanînek (wehyek) ji min re hatiye ku ew ji te re nehatiye. Nexwe bide pey min, ez ê te bînim riyeke rast.

**44**- Bavê mino! Şeytên nehebîne! Bêguman pelîd (îblîs) bêemriya Xwedayê rehman kiriye.

**45**- Bavê mino! Bêguman (Eger tu tobe nekî) ez ditirsim ku ji Xwedayê rehman ezabek te bihingêve û tu bibî dost û hevalê pelîd.

**46**- (Vêca bavê wî jê re) Got: Ey Îbrahîm! Ma tu berê xwe ji pûtên min diguherînî? Eger tu venegerî, sond be ku ez ê te bi keviran birecimînim û demeke dirêj ji min dûr bibe.

**47**- (Îbrahîm jê re) Got: Silav li ser te be, ez ê ji bo te lêborînê ji Xwedayê xwe bixwazim. Bêguman ew ji min re pir qencîkar e.

**48**- Ez ê ji we dûr bikevim û ji wan (pût)ên ku ji bilî Xwedê hûn ji bo wan îbadetê dikin û ez ê bes ji Xwedayê xwe dua bikim (û ez ê bes bi wî biperizim). Ez hêvî dikim ku bi gaziya Xwedayê xwe bêhêvî nebim.

**49**- Paşê, dema Îbrahîm ji wan û ji wan pûtên ku ji bilî Xwedê Teala ew dihebandin xwe dûr kir, Me Îshaq (bi kurîtî) û Yaqûb (bi nevîtî) danê û me her yek ji wan jî kire pêxemberek.

**50**- Me ji bo wan ji rehma xwe (qenciya dinya û axretê) bexişand û Me nav û dengê wan bi qencî (di nav xelkê de) bilind kir.

**51**- (Ya Muhemmed!) Di vê Quranê de behsa Mûsa jî bike. Bêguman ew bijare bû û ew qasid û pêxember bû.

وَنَادَيْنَاهُ مِنْ جَانِبِ الطُّورِ الْاَيْمَنِ وَقَرَّبْنَاهُ نَجِيًّا ﴿٥٢﴾ وَوَهَبْنَا لَهُ
مِنْ رَحْمَتِنَا اَخَاهُ هٰرُونَ نَبِيًّا ﴿٥٣﴾ وَاذْكُرْ فِي الْكِتَابِ اِسْمٰعِيلَ اِنَّهُ
كَانَ صَادِقَ الْوَعْدِ وَكَانَ رَسُولًا نَبِيًّا ﴿٥٤﴾ وَكَانَ يَأْمُرُ اَهْلَهُ بِالصَّلٰوةِ
وَالزَّكٰوةِ وَكَانَ عِنْدَ رَبِّهِ مَرْضِيًّا ﴿٥٥﴾ وَاذْكُرْ فِي الْكِتَابِ اِدْرِيسَ
اِنَّهُ كَانَ صِدّٖيقًا نَبِيًّا ﴿٥٦﴾ وَرَفَعْنَاهُ مَكَانًا عَلِيًّا ﴿٥٧﴾ اُولٰٓئِكَ الَّذٖينَ
اَنْعَمَ اللّٰهُ عَلَيْهِمْ مِنَ النَّبِيّٖنَ مِنْ ذُرِّيَّةِ اٰدَمَ وَمِمَّنْ حَمَلْنَا مَعَ نُوحٍ
وَمِنْ ذُرِّيَّةِ اِبْرٰهٖيمَ وَاِسْرَٓائٖيلَ وَمِمَّنْ هَدَيْنَا وَاجْتَبَيْنَا اِذَا تُتْلٰى
عَلَيْهِمْ اٰيَاتُ الرَّحْمٰنِ خَرُّوا سُجَّدًا وَبُكِيًّا ﴿٥٨﴾ فَخَلَفَ مِنْ بَعْدِهِمْ
خَلْفٌ اَضَاعُوا الصَّلٰوةَ وَاتَّبَعُوا الشَّهَوَاتِ فَسَوْفَ يَلْقَوْنَ غَيًّا ﴿٥٩﴾
اِلَّا مَنْ تَابَ وَاٰمَنَ وَعَمِلَ صَالِحًا فَاُولٰٓئِكَ يَدْخُلُونَ الْجَنَّةَ وَلَا
يُظْلَمُونَ شَيْـًٔا ﴿٦٠﴾ جَنَّاتِ عَدْنٍ الَّتٖي وَعَدَ الرَّحْمٰنُ عِبَادَهُ
بِالْغَيْبِ اِنَّهُ كَانَ وَعْدُهُ مَأْتِيًّا ﴿٦١﴾ لَا يَسْمَعُونَ فٖيهَا لَغْوًا اِلَّا سَلَامًا
وَلَهُمْ رِزْقُهُمْ فٖيهَا بُكْرَةً وَعَشِيًّا ﴿٦٢﴾ تِلْكَ الْجَنَّةُ الَّتٖي نُورِثُ
مِنْ عِبَادِنَا مَنْ كَانَ تَقِيًّا ﴿٦٣﴾ وَمَا نَتَنَزَّلُ اِلَّا بِاَمْرِ رَبِّكَ لَهُ مَا
بَيْنَ اَيْدٖينَا وَمَا خَلْفَنَا وَمَا بَيْنَ ذٰلِكَ وَمَا كَانَ رَبُّكَ نَسِيًّا ﴿٦٤﴾

رَبُّ

**52**- Me ji rexê rastê, yê Çiyayê Tûr gazî wî kir û me ji bo munacatê ew tam nêzî xwe kir.

**53**- Me ji qencî û dilovaniya xwe, birayê wî Harûn jî digel wî kire pêxember.

**54**- Di vê Quranê de behsa serpêhatiya Îsmaîl jî bike. Bêguman ew wefakarê peymana xwe bû û ew hem resûl bû hem jî pêxember bû.

**55**- Îsmaîl şîreta nimêj û zekatê li xelkê xwe dikir û ew li cem Xwedayê xwe mirovekî jêqayîl bû.

**56**- Di vê Quranê de behsa Îdrîs jî bike. Bêguman ew pêxemberekî rastgo bû...

**57**- Me ew hildaye cihekî bilind.

**58**- Ha ev ên ha, ew ên ku Xwedê nimet li wan kiriye; ji pêxemberên ku ji kinêsa Adem in û ji yên ku me ew digel Nûh Pêxember (li keştiyê) siwar kirin û ji kinêsa Îbrahîm û Îsraîl (Yaqûb) û ji yên ku Me ew anîne ser riya rast û Me ew (ji bo pêxemberiyê) bijartine. Dema ayetên Xwedayê rehman ji wan re tên xwendin (ji tirsa Xwedê) ji xwe ve diçin û bi girî ve diçin sicûdê.

**59**- Paşê, di pey wan (qencan) de nifşekî wisa hat ku dest ji nimêjê berdan û li pey hewesên xwe çûn, vêca ew ê nexweşî û azarê bibînin.

**60**- Lê belê ew ên ku ji kirinên xwe poşman bibin, bawerî bînin û karê qenciyê bikin, vêca ha ev dê biçin bihiştê û hîç tu neheqî li wan dê neyê kirin.

**61**- (Ew) Bihiştên ‘Ednê (lêmayînê) ne ku Xwedayê rehman di xeybê de peymana wan ji bendeyên xwe re daye û wan bêyî ku bibînin bawerî pê aniye. Bêguman peymana Xwedê Teala dê were cih.

**62**- Li wir, ew ê ne gotinên kelevajî, lê belê bes dê silavê bibihîzin. Li wir sibeh û êvarê rizqê (xwarin û vexwarina) wan ji wan re amade ye.

**63**- Ha ev e, ew bihişta ku ji bendeyên xwe em ê bidin kesê ku teqwadar be.

**64**- (Xwedê ferman li Cebraîl kir ku bibêje:) Em bes bi fermana Xwedayê te û bi destûra wî têne xwarê. Çi tiştê li ber me (ji kar û barên dinyayê) û ya li dûv me (ji kar û barên axretê) û çi ya ku di navbera van de heye, tev ên Xwedê ne (û her tişt bi fermana wî ye). Xwedayê te hîç ne jibîrker e (heta ku te ji bîr bike).

Li gorî ku Îmam Buxarî di sehîha xwe de ji Îbnu Ebbas (r) ragihandiye: Çi dema ku çend rojan wehî bi derengî ket, Pêxamber (s) ji Cibraîl re wiha got: Çi tişt nahêle ku tu pir seriya bidî me? Vêca ev ayet hate xwarê.

**65**- (Xwedayê te) Xwedayê erd û asîmanan e û Xwedayê çiqas tiştê di navbera wan de heye. Nexwe, îbadeta wî bike û li ser kirina îbadeta wî sebrê bikêşe. Erê ma tu jê re hemkûfekî din dizanî?

**66**- Însan(ê kafir) dê bibêje: Dema ez bimirim, ma qey rast e ku ez ê dîsa (ji gorê) sax bême deranîn?

**67**- Ma însan nahizire! Me ew afirandiye digel ku berê ew tune bû.

**68**- Vêca bi Xwedayê te sond be, teqez em ê wan û şeytanên wan (li mehşerê) pêkve bicivînin, piştre em ê wan li ser çokên wan li dora dojehê kom bikin!

**69**- Piştre, ji her komekê ya ku li hemberî Xwedayê rehman bêhtir gunehkar be, em ê wê (ji nav wan) derînin (ku ew serwer û mezinên wan in û pêşî em ê wan biavêjin dojehê).

**70**- Piştre, teqez em bi yên ku çûna dojehê heq kirine bêhtir dizanin (em ê pêşî dest biavêjin wan).

**71**- Ji we her kes (çi mumîn û çi kafir) her wê bê ser dojehê û dê wê bibîne. Ev ji Xwedayê te hukmekî vebirî ye.

**72**- Piştre em ê yên ku xwe (ji muşrikî û kufrê) parastine reha bikin û Em ê sitemkaran jî li ser çokan rûniştî di dojehê de wisa bihêlin.

**73**- Dema ayetên Me yên aşkeraker ji mirovan re dihatin xwendin, ên ku kafir bûne ji yên bawermend re digotin: Ma ji me her du civatan cih û warê kê çêtir e û dîwana kê spehîtir e?



رَبُّ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَمَا بَيْنَهُمَا فَاعْبُدْهُ وَاصْطَبِرْ لِعِبَادَتِهٖ
هَلْ تَعْلَمُ لَهُ سَمِيًّا ﴿٦٥﴾ وَيَقُولُ الْاِنْسَانُ ءَاِذَا مَا مِتُّ لَسَوْفَ
اُخْرَجُ حَيًّا ﴿٦٦﴾ اَوَلَا يَذْكُرُ الْاِنْسَانُ اَنَّا خَلَقْنَاهُ مِنْ قَبْلُ وَلَمْ
يَكُ شَيْـًٔا ﴿٦٧﴾ فَوَرَبِّكَ لَنَحْشُرَنَّهُمْ وَالشَّيَاطِينَ ثُمَّ لَنُحْضِرَنَّهُمْ
حَوْلَ جَهَنَّمَ جِثِيًّا ﴿٦٨﴾ ثُمَّ لَنَنْزِعَنَّ مِنْ كُلِّ شِيعَةٍ اَيُّهُمْ اَشَدُّ عَلَى
الرَّحْمٰنِ عِتِيًّا ﴿٦٩﴾ ثُمَّ لَنَحْنُ اَعْلَمُ بِالَّذِينَ هُمْ اَوْلٰى بِهَا صِلِيًّا
﴿٧٠﴾ وَاِنْ مِنْكُمْ اِلَّا وَارِدُهَا كَانَ عَلٰى رَبِّكَ حَتْمًا مَقْضِيًّا ﴿٧١﴾
ثُمَّ نُنَجِّى الَّذِينَ اتَّقَوْا وَنَذَرُ الظَّالِمِينَ فِيهَا جِثِيًّا ﴿٧٢﴾ وَاِذَا
تُتْلٰى عَلَيْهِمْ اٰيَاتُنَا بَيِّنَاتٍ قَالَ الَّذِينَ كَفَرُوا لِلَّذِينَ اٰمَنُوا
اَىُّ الْفَرِيقَيْنِ خَيْرٌ مَقَامًا وَاَحْسَنُ نَدِيًّا ﴿٧٣﴾ وَكَمْ اَهْلَكْنَا
قَبْلَهُمْ مِنْ قَرْنٍ هُمْ اَحْسَنُ اَثَاثًا وَرِءْيًا ﴿٧٤﴾ قُلْ مَنْ كَانَ
فِى الضَّلَالَةِ فَلْيَمْدُدْ لَهُ الرَّحْمٰنُ مَدًّا حَتّٰى اِذَا رَاَوْا مَا يُوعَدُونَ
اِمَّا الْعَذَابَ وَاِمَّا السَّاعَةَ فَسَيَعْلَمُونَ مَنْ هُوَ شَرٌّ مَكَانًا
وَاَضْعَفُ جُنْدًا ﴿٧٥﴾ وَيَزِيدُ اللّٰهُ الَّذِينَ اهْتَدَوْا هُدًى
وَالْبَاقِيَاتُ الصَّالِحَاتُ خَيْرٌ عِنْدَ رَبِّكَ ثَوَابًا وَخَيْرٌ مَرَدًّا ﴿٧٦﴾

**74**- Beriya wan jî me gelek milet ji navê birin ku ew ji aliyê pertal û dîtbarî ve (ji wan) rindtir bûn.

**75**- (Ya Muhemmed!) Bibêje: Kî, (ji me û we) di rêşaşiyê de be, bila Xwedayê rehman muhletê bide wî, heta dema ya ku Xwedê ji wan re pê peyman dayî bibînin; yan ezabê vê dinyayê (ku têkçûna li hember bawermendan e) yan jî ezabê axretê bibînin, vêca wê çaxê ew ê bizanin ka ji hêla cih û war ve kî pîstir e û ji hêla leşkerî ve kî qelstir e.

**76**- Xwedê Teala, ew ê hîdayeta wan bendeyên ku hatine ser riya rast zêde bike. Kar û barên qenc, ew ên ku (ji bo mirov) dimînin, li cem Xwedayê te çêtir in û encama wan baştir e.

أَفَرَأَيْتَ الَّذ۪ي كَفَرَ بِاٰيَاتِنَا وَقَالَ لَاُو۫تَيَنَّ مَالًا وَوَلَدًا ٧٧
أَطَّلَعَ الْغَيْبَ اَمِ اتَّخَذَ عِنْدَ الرَّحْمٰنِ عَهْدًا ٧٨ كَلَّا سَنَكْتُبُ
مَا يَقُولُ وَنَمُدُّ لَهُ مِنَ الْعَذَابِ مَدًّا ٧٩ وَنَرِثُهُ مَا يَقُولُ وَيَأْت۪ينَا
فَرْدًا ٨٠ وَاتَّخَذُوا مِنْ دُونِ اللّٰهِ اٰلِهَةً لِيَكُونُوا لَهُمْ عِزًّا
٨١ كَلَّا سَيَكْفُرُونَ بِعِبَادَتِهِمْ وَيَكُونُونَ عَلَيْهِمْ ضِدًّا
٨٢ اَلَمْ تَرَ اَنَّا اَرْسَلْنَا الشَّيَاط۪ينَ عَلَى الْكَافِر۪ينَ تَؤُزُّهُمْ
اَزًّا ٨٣ فَلَا تَعْجَلْ عَلَيْهِمْ اِنَّمَا نَعُدُّ لَهُمْ عَدًّا ٨٤ يَوْمَ نَحْشُرُ
الْمُتَّق۪ينَ اِلَى الرَّحْمٰنِ وَفْدًا ٨٥ وَنَسُوقُ الْمُجْرِم۪ينَ اِلٰى جَهَنَّمَ
وِرْدًا ٨٦ لَا يَمْلِكُونَ الشَّفَاعَةَ اِلَّا مَنِ اتَّخَذَ عِنْدَ الرَّحْمٰنِ
عَهْدًا ٨٧ وَقَالُوا اتَّخَذَ الرَّحْمٰنُ وَلَدًا ٨٨ لَقَدْ جِئْتُمْ شَيْـًٔا اِدًّا
٨٩ تَكَادُ السَّمٰوَاتُ يَتَفَطَّرْنَ مِنْهُ وَتَنْشَقُّ الْاَرْضُ وَتَخِرُّ
الْجِبَالُ هَدًّا ٩٠ اَنْ دَعَوْا لِلرَّحْمٰنِ وَلَدًا ٩١ وَمَا يَنْبَغ۪ي
لِلرَّحْمٰنِ اَنْ يَتَّخِذَ وَلَدًا ٩٢ اِنْ كُلُّ مَنْ فِي السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضِ اِلَّا اٰتِي الرَّحْمٰنِ عَبْدًا ٩٣ لَقَدْ اَحْصٰيهُمْ
وَعَدَّهُمْ عَدًّا ٩٤ وَكُلُّهُمْ اٰت۪يهِ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ فَرْدًا ٩٥
اِنَّ

**77**- Ka berê xwe bidê, te dît? Ew ê ku ayetên Me mandel kirine ku digot: (Roja ez ji gorê rabim û zindî bibim) Teqez mal û zarok dê ji min re bên dayîn.

**78**- Ma xeyb li ber wî vebûye, yan jî ma wî ji cem Xwedayê rehman peymanek wergirtiye?

**79**- Na, ne wisan e. Em ê ya ku ew dibêje binivîsin û em ê ezabê wî her dirêj bikin.

**80**- Em ê bibin warisê ya ku ew (ji mal û zarokan) dibêje û ew ê bi tenê dê bi bal me ve bê.

**81**- Wan ji bilî Xwedê Teala îlah ji xwe re girtin da ku ji wan re bibin hêz û arîkar.

**82**- Na, ne weke ku ew dibêjin. Mabûdên wan dê (roja qiyametê) îbadetên wan qebûl nekin û wê ji wan re bibin neyar.

**83**- Ma tu nabînî? Me pelîd museletî ser kafiran kir û vêca wan rind diajo ser gunehkariyê.

**84**- Nexwe, der barê wan de lez meke. Em yeko yeko rojên wan dijimêrin.

**85**- Roja qiyametê Em mutteqiyan qefle bi qefle li cem Xwedayê rehman kom dikin.

**86**- Em, gunehkaran jî (ji ber kufra wan) tî diajon dojehê.

**87**- Ji wî yê ku ji cem Xwedayê rehman peyman û destûr wergirtiye pê ve tu kes nikare mehderê bike.

**88**- (Kafiran) Gotin: Xwedayê rehman ji xwe re zarok girtine.

**89**- Bêguman we tiştekî erjeng avêtiye meydanê.

**90**- (Ji ber vê axaftina we) asîman dikin biderizin, erd dike biqelişe û çiya dikin biherifin!

**91**- Ji ber ku wan (kafiran) ji Xwedayê rehman re zarok gerandine.

**92**- Hal ev e ku ne babetê Xwedayê rehman e ku ew zarokan ji xwe re bigire.

**93**- Li erd û asîmanan kes nîn e ku bi bendetî neyê cem Xwedayê rehman (vêca Xwedê çi hewcehî bi zarokan heye)!

**94**- Sond be, Xwedayê rehman ew tev hesab kirine û hûr hûr ew jimartine.

**95**- Roja qiyametê ew tev yeko yeko dê bêne ber destê Xwedê Teala.

إِنَّ الَّذِينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ سَيَجْعَلُ لَهُمُ الرَّحْمٰنُ وُدًّا ﴿٩٦﴾ فَإِنَّمَا
يَسَّرْنَاهُ بِلِسَانِكَ لِتُبَشِّرَ بِهِ الْمُتَّقِينَ وَتُنْذِرَ بِهِ قَوْمًا لُدًّا ﴿٩٧﴾ وَكَمْ أَهْلَكْنَا
قَبْلَهُمْ مِنْ قَرْنٍ هَلْ تُحِسُّ مِنْهُمْ مِنْ أَحَدٍ أَوْ تَسْمَعُ لَهُمْ رِكْزًا ﴿٩٨﴾

سُورَةُ طٰهٰ مَكِّيَّةٌ وَهِيَ
مِائَةٌ وَخَمْسٌ وَثَلٰثُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

طٰهٰ ﴿١﴾ مَا أَنْزَلْنَا عَلَيْكَ الْقُرْاٰنَ لِتَشْقٰى ﴿٢﴾ إِلَّا تَذْكِرَةً لِمَنْ
يَخْشٰى ﴿٣﴾ تَنْزِيلًا مِمَّنْ خَلَقَ الْأَرْضَ وَالسَّمٰوَاتِ الْعُلٰى ﴿٤﴾
الرَّحْمٰنُ عَلَى الْعَرْشِ اسْتَوٰى ﴿٥﴾ لَهُ مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَمَا فِي
الْأَرْضِ وَمَا بَيْنَهُمَا وَمَا تَحْتَ الثَّرٰى ﴿٦﴾ وَإِنْ تَجْهَرْ بِالْقَوْلِ
فَإِنَّهُ يَعْلَمُ السِّرَّ وَأَخْفٰى ﴿٧﴾ اَللّٰهُ لَا إِلٰهَ إِلَّا هُوَ لَهُ الْأَسْمَاءُ
الْحُسْنٰى ﴿٨﴾ وَهَلْ أَتٰيكَ حَدِيثُ مُوسٰى ﴿٩﴾ إِذْ رَأٰى نَارًا فَقَالَ
لِأَهْلِهِ امْكُثُوا إِنِّي اٰنَسْتُ نَارًا لَعَلِّي اٰتِيكُمْ مِنْهَا بِقَبَسٍ
أَوْ أَجِدُ عَلَى النَّارِ هُدًى ﴿١٠﴾ فَلَمَّا أَتٰيهَا نُودِيَ يَا مُوسٰى ﴿١١﴾ إِنِّي
أَنَا رَبُّكَ فَاخْلَعْ نَعْلَيْكَ إِنَّكَ بِالْوَادِ الْمُقَدَّسِ طُوًى ﴿١٢﴾

**96**- Bêguman ew ên ku bawerî anîn û karên qenc kirine, Xwedayê rehman dê hezkirina wan têxa dilan.

**97**- (Ya Muhemmed!) Me Quran bi zimanê te hêsan kiriye da ku tu bi wê mizgînê bidî mutteqiyan û tu bi wê civateke miqeris hişyar bikî.

**98**- Me beriya wan gelek milet ji navê birin. Erê ma tu pêjna kesî ji wan dikî yan jî ma tu pistepista wan dibihîzî?

## SÛREYÊ TA-HA

Sûreyê Ta-Ha, sed û sî û pênc (135) ayet e. Li Mekkê daketiye. Sûre, navê xwe ji herfên serê xwe yên Ta-Ha girtiye ku navek ji yên Pêxemberê Xwedê ye.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

**1**- Ta-Ha.

**2**- Me ev Quran, ne ji bo ku tu (pê) zehmetiyê bikêşî û xemgîn bibî hinartiye.

**3**- Me ew bes ji bo wî kesê ku ji dil ji Xweda ditirse da ku jê re bibe pend û haydarî hinartiye.

**4**- (Ev peyam) ji teref wî xwedayê ku erd û asîmanên bilind afirandine, li pey hev hatiye hinartin.

**5**- Xwedayê dilovan, li ser textê hukimraniyê rûnişt (rûniştineke babetê xwe û bêşekil û bêawa).

**6**- Çiqas tiştê li erd û asîmanan hene û çiqas ê di navbera wan de û yê di binê erdê de jî tev yên Xwedê ne.

**7**- Eger ku tu dengê xwe (di zikr û xwendinê de) bilind bikî (Xweda ne hewcehî vê ye). Vêca bêguman Xweda ya di dilan de û ya ji wê jî veşarîtir dizane.

**8**- Ellah Teala, ew Xweda ye ku ji wî pê ve tu m'ebûdê bi rastî nîn in. Navên herî spehî her jê re ne.

**9**- Ma serpêhatiya Mûsa negihîştiye te?

**10**- Dema Mûsa agirek dît û ji ehlê xwe re got: Li vir rawestin! Bêguman agirek li ber çavên min ket. Dibe ku ez ji we re perengekî jê bînim an jî li cem êgir rêberekî bibînim (da ku riya rast ber me bixe).

**11**- Gava Mûsa gihîşt cem êgir, lê hate gazîkirin, got: Ey Mûsa!

**12**- Ez im, Ez Xwedayê te me! Vêca sola xwe ji lingê xwe bike. Lewra tu li newala pîroz, li Tuwayê yî!

وَاَنَا اخْتَرْتُكَ فَاسْتَمِعْ لِمَا يُوحٰى ﴿١٣﴾ اِنَّن۪ٓي اَنَا اللّٰهُ لَٓا اِلٰهَ اِلَّٓا اَنَا
فَاعْبُدْن۪يۙ وَاَقِمِ الصَّلٰوةَ لِذِكْر۪ي ﴿١٤﴾ اِنَّ السَّاعَةَ اٰتِيَةٌ اَكَادُ
اُخْف۪يهَا لِتُجْزٰى كُلُّ نَفْسٍ بِمَا تَسْعٰى ﴿١٥﴾ فَلَا يَصُدَّنَّكَ عَنْهَا مَنْ
لَا يُؤْمِنُ بِهَا وَاتَّبَعَ هَوٰيهُ فَتَرْدٰى ﴿١٦﴾ وَمَا تِلْكَ بِيَم۪ينِكَ
يَا مُوسٰى ﴿١٧﴾ قَالَ هِيَ عَصَايَۚ اَتَوَكَّؤُا عَلَيْهَا وَاَهُشُّ بِهَا عَلٰى
غَنَم۪ي وَلِيَ ف۪يهَا مَاٰرِبُ اُخْرٰى ﴿١٨﴾ قَالَ اَلْقِهَا يَا مُوسٰى ﴿١٩﴾ فَاَلْقٰيهَا
فَاِذَا هِيَ حَيَّةٌ تَسْعٰى ﴿٢٠﴾ قَالَ خُذْهَا وَلَا تَخَفْ سَنُع۪يدُهَا
س۪يرَتَهَا الْاُو۫لٰى ﴿٢١﴾ وَاضْمُمْ يَدَكَ اِلٰى جَنَاحِكَ تَخْرُجْ بَيْضَٓاءَ
مِنْ غَيْرِ سُٓوءٍ اٰيَةً اُخْرٰىۙ ﴿٢٢﴾ لِنُرِيَكَ مِنْ اٰيَاتِنَا الْكُبْرٰىۚ ﴿٢٣﴾ اِذْهَبْ
اِلٰى فِرْعَوْنَ اِنَّهُ طَغٰىۚ ﴿٢٤﴾ قَالَ رَبِّ اشْرَحْ ل۪ي صَدْر۪يۙ ﴿٢٥﴾
وَيَسِّرْ ل۪ٓي اَمْر۪يۙ ﴿٢٦﴾ وَاحْلُلْ عُقْدَةً مِنْ لِسَان۪يۙ ﴿٢٧﴾ يَفْقَهُوا قَوْل۪يۖ ﴿٢٨﴾
وَاجْعَلْ ل۪ي وَز۪يرًا مِنْ اَهْل۪يۙ ﴿٢٩﴾ هٰرُونَ اَخ۪يۙ ﴿٣٠﴾ اُشْدُدْ بِه۪ٓ
اَزْر۪يۙ ﴿٣١﴾ وَاَشْرِكْهُ ف۪ٓي اَمْر۪يۙ ﴿٣٢﴾ كَيْ نُسَبِّحَكَ كَث۪يرًاۙ ﴿٣٣﴾
وَنَذْكُرَكَ كَث۪يرًاۜ ﴿٣٤﴾ اِنَّكَ كُنْتَ بِنَا بَص۪يرًا ﴿٣٥﴾ قَالَ قَدْ اُو۫ت۪يتَ
سُؤْلَكَ يَا مُوسٰى ﴿٣٦﴾ وَلَقَدْ مَنَنَّا عَلَيْكَ مَرَّةً اُخْرٰىۙ ﴿٣٧﴾
اِذْ

13- Min tu (bi pêxemberî) bijart, nexwe li peyama ku ji te re tê guhdarî bike.

14- Bêguman ez Ellah Teala me. Ji min pê ve tu xweda nîn in. Nexwe ji bo min îbadet bike û ji bo bîranîna min nimêj bike.

15- Bêguman qiyamet teqez tê û ez (dema rabûna wê bi nîşanên) wê xef dikim, da ku her kes cezayê tiştê ku di ber de dibeze, bibîne.

16- (Ey Mûsa!) Zinhar, bila ew kesê ku bawerî bi qiyametê neyîne û li pey hewesa xwe ketiye, te ji wê (bawerî û haziriya ji bo roja qiyametê) venegerîne! Vêca (eger tu ji qiyametê xafil bibî) tu (dê) biçî helakê.

17- Ey Mûsa! Ew çi ye di destê te yê rastê de?

18- (Mûsa) Got: Ew, gopalê min e, ez pala xwe didim ser û ez pelên daran ji pezê xwe re pê diweşînim û ji bo min hin pêdiviyên din jî pê hene.

19- Xwedê got: Ey Mûsa! wî biavêje.

20- Di cih de Mûsa ew avêt, vêca te dît ku ew (bi qudreta Xwedê) bû marek ku bi lez (li ser zikê xwe) diçe.

21- Xwedê jê re got: Rahêjê û metirse! Em ê dîsa wî vegerînin ser rewşa wî ya berê.

22- Destê xwe bêxe bin çengê xwe, (dema te derxist) tê bibînî ku spî derket, spîtiyeke ne ji nexweşî ku ev jî mucîzeyeke din e.

23- (Daxwaza me ji vê ev e) da ku em hin ayetên xwe yên herî mezin nîşanî te bidin.

24- Here nik Firewn, bi rastî ew (pir) ser xwe ve çûye.

25- (Mûsa) Got: Xwedayê min! Sînga min (bi îmanê ronahî û) fireh bike (da bikaribim di bin barê pêxemberiyê de xwe bigirim).

26- Karê min ji bo min hêsan bike.

27- Girêka zimanê min veke.

28- Da ku gotina min fêm bikin.

29- Ji malbata min wezîrekî (arîkarekî) bide min.

30- Bila ew birayê min Harûn be.

31- Bi (arîkariya) wî pişta min xurt bike.

32- Di pêxemberiyê de jî wî bike şirîk û hevalê min.

33- Da em pir pir te ji eyb û kêmasiyan pak bidêrin.

34- Û em pir pir te di bîra xwe bînin.

35- Bêguman tu me dibînî.

36- Xwedê Teala jê re got: Ey Mûsa! Ya ku te dixwest ji te re hate dayîn.

37- Sond be, Me (ji bilî vê carê) careke din jî qencî li te kiribû (ku me ji Firewn û bereka wî tu xelas kiribû).

إِذْ أَوْحَيْنَا إِلَى أُمِّكَ مَا يُوحَى ﴿٣٨﴾ أَنِ اقْذِفِيهِ فِي التَّابُوتِ فَاقْذِفِيهِ
فِي الْيَمِّ فَلْيُلْقِهِ الْيَمُّ بِالسَّاحِلِ يَأْخُذْهُ عَدُوٌّ لِي وَعَدُوٌّ لَهُ وَأَلْقَيْتُ
عَلَيْكَ مَحَبَّةً مِنِّي وَلِتُصْنَعَ عَلَى عَيْنِي ﴿٣٩﴾ إِذْ تَمْشِي أُخْتُكَ فَتَقُولُ
هَلْ أَدُلُّكُمْ عَلَى مَنْ يَكْفُلُهُ فَرَجَعْنَاكَ إِلَى أُمِّكَ كَيْ تَقَرَّ عَيْنُهَا
وَلَا تَحْزَنَ وَقَتَلْتَ نَفْسًا فَنَجَّيْنَاكَ مِنَ الْغَمِّ وَفَتَنَّاكَ فُتُونًا
فَلَبِثْتَ سِنِينَ فِي أَهْلِ مَدْيَنَ ثُمَّ جِئْتَ عَلَى قَدَرٍ يَا مُوسَى ﴿٤٠﴾
وَاصْطَنَعْتُكَ لِنَفْسِي ﴿٤١﴾ اذْهَبْ أَنْتَ وَأَخُوكَ بِآيَاتِي وَلَا تَنِيَا
فِي ذِكْرِي ﴿٤٢﴾ اذْهَبَا إِلَى فِرْعَوْنَ إِنَّهُ طَغَى ﴿٤٣﴾ فَقُولَا لَهُ قَوْلًا لَيِّنًا
لَعَلَّهُ يَتَذَكَّرُ أَوْ يَخْشَى ﴿٤٤﴾ قَالَا رَبَّنَا إِنَّنَا نَخَافُ أَنْ يَفْرُطَ عَلَيْنَا
أَوْ أَنْ يَطْغَى ﴿٤٥﴾ قَالَ لَا تَخَافَا إِنَّنِي مَعَكُمَا أَسْمَعُ وَأَرَى
﴿٤٦﴾ فَأْتِيَاهُ فَقُولَا إِنَّا رَسُولَا رَبِّكَ فَأَرْسِلْ مَعَنَا بَنِي إِسْرَائِيلَ
وَلَا تُعَذِّبْهُمْ قَدْ جِئْنَاكَ بِآيَةٍ مِنْ رَبِّكَ وَالسَّلَامُ عَلَى مَنِ اتَّبَعَ
الْهُدَى ﴿٤٧﴾ إِنَّا قَدْ أُوحِيَ إِلَيْنَا أَنَّ الْعَذَابَ عَلَى مَنْ كَذَّبَ
وَتَوَلَّى ﴿٤٨﴾ قَالَ فَمَنْ رَبُّكُمَا يَا مُوسَى ﴿٤٩﴾ قَالَ رَبُّنَا الَّذِي أَعْطَى
كُلَّ شَيْءٍ خَلْقَهُ ثُمَّ هَدَى ﴿٥٠﴾ قَالَ فَمَا بَالُ الْقُرُونِ الْأُولَى ﴿٥١﴾

**38**- Dema ku (tu ji dayika xwe bûyî) Me îlham da dayika te, ya ku me dayê:

**39**- (Me îlham dayê ku) Mûsa bixe sindoqê, piştre biavêje deryayê ku derya jî wî biavêje keviya xwe, vêca neyarê min û neyarê wî, wî bigire. Min ji cem xwe hezkirinek avête ser te (da ku ji te hez bikin) û da ku tu di bin çavdêriya min de perwerde bibî.

**40**- Dema ku xwişka te li pey te dihat û (ji mala Firewn re) digot: Ma ez yeke ku şîr bidê û xwedî bike şanî we bidim? Vêca me tu li dayika te vegerand da ku çavê wê bi te ronî bibe û xemgîn jî nebe. (Piştî tu mezin bûyî) te yek kuşt, Me tu ji xema wê kuştinê xelas kir. Me tu bi gelek derd û bela îmtîhan kir (belê her carê me tu rizgar kirî). Tu çend salan li nava xelkê Medyenê (digel Şueyb Pêxember) mayî. Ey Mûsa! Paşê li gorî teqdîrekê tu hatî.

**41**- Min tu ji bo (pêxembertiya) xwe bijartiye.

**42**- Tu û birayê xwe bi hev re nîşanên min bibin û di bîranîna (zikrê) min de sistiyê mekin.

**43**- Her du herin cem Firewn, lewra ew pir ji ser xwe çûye.

**44**- Hûn her du gotineke xweş jê re bibêjin. Belkî ew aqil bigire, yan jî (ji Xwedê Teala) bitirse (û ji rêşaşiya xwe vegere).

**45**- Gotin: Xwedayê me! Bêguman em fikare dikin ku ew zû ceza bide me yan jî hê bêhtir ser xwe biçe.

**46**- (Xwedê) Got: Metirsin, lewra ez (bi arîkariya xwe) bi we re me; (ya ku ew bibêje) dibihîzim û (ya ku ew bike) dibînim.

**47**- De heydê her du herin û jê re bibêjin: Em pêxemberên Xwedayê te ne. Vêca îsraîliyan digel me bişîne (dev ji wan berde) û bes azarê bide wan! Me ji Xwedayê te mucizeyek aniye (ku ew nîşan e li ser pêxemberiya me) û selametî ji wî kesî re ye ku bide pey hîdayetê.

**48**- Bêguman wehî ji me re hatiye hinartin ku bêşik ezab ji bo wî kesî ye ku (bi pêxemberan) bawerî nayîne û berê xwe (ji heqiyê) vedigerîne.

**49**- Firewn got: Ey Mûsa! Ma Xwedayê we kî ye?

**50**- Mûsa jî (jê re) got: Xwedayê me, ew Xweda ye ku her tişt daye mexlûqên xwe, piştre berê wan daye riya rast.

**51**- (Firewn jê re) Got: Ku welê be, nexwe rewşa wan miletên berê dê bibe çi?

قَالَ عِلْمُهَا عِنْدَ رَبّى فى كِتَابٍ لَا يَضِلُّ رَبّى وَلَا يَنْسٰى ﴿٥٢﴾ اَلَّذى
جَعَلَ لَكُمُ الْاَرْضَ مَهْدًا وَسَلَكَ لَكُمْ فيهَا سُبُلًا وَاَنْزَلَ مِنَ السَّمَاءِ
مَاءً فَاَخْرَجْنَا بِه اَزْوَاجًا مِنْ نَبَاتٍ شَتّٰى ﴿٥٣﴾ كُلُوا وَارْعَوْا
اَنْعَامَكُمْ اِنَّ فى ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِاُولِى النُّهٰى ﴿٥٤﴾ مِنْهَا خَلَقْنَاكُمْ
وَفيهَا نُعيدُكُمْ وَمِنْهَا نُخْرِجُكُمْ تَارَةً اُخْرٰى ﴿٥٥﴾ وَلَقَدْ اَرَيْنَاهُ
اٰيَاتِنَا كُلَّهَا فَكَذَّبَ وَاَبٰى ﴿٥٦﴾ قَالَ اَجِئْتَنَا لِتُخْرِجَنَا مِنْ اَرْضِنَا
بِسِحْرِكَ يَا مُوسٰى ﴿٥٧﴾ فَلَنَاْتِيَنَّكَ بِسِحْرٍ مِثْلِه فَاجْعَلْ بَيْنَنَا
وَبَيْنَكَ مَوْعِدًا لَا نُخْلِفُهُ نَحْنُ وَلَا اَنْتَ مَكَانًا سُوًى ﴿٥٨﴾ قَالَ
مَوْعِدُكُمْ يَوْمُ الزّينَةِ وَاَنْ يُحْشَرَ النَّاسُ ضُحًى ﴿٥٩﴾ فَتَوَلّٰى فِرْعَوْنُ
فَجَمَعَ كَيْدَهُ ثُمَّ اَتٰى ﴿٦٠﴾ قَالَ لَهُمْ مُوسٰى وَيْلَكُمْ لَا تَفْتَرُوا عَلَى اللّٰهِ
كَذِبًا فَيُسْحِتَكُمْ بِعَذَابٍ وَقَدْ خَابَ مَنِ افْتَرٰى ﴿٦١﴾ فَتَنَازَعُوا
اَمْرَهُمْ بَيْنَهُمْ وَاَسَرُّوا النَّجْوٰى ﴿٦٢﴾ قَالُوا اِنْ هٰذَانِ لَسَاحِرَانِ يُريدَانِ
اَنْ يُخْرِجَاكُمْ مِنْ اَرْضِكُمْ بِسِحْرِهِمَا وَيَذْهَبَا بِطَريقَتِكُمُ الْمُثْلٰى ﴿٦٣﴾
فَاَجْمِعُوا كَيْدَكُمْ ثُمَّ ائْتُوا صَفًّا وَقَدْ اَفْلَحَ الْيَوْمَ مَنِ اسْتَعْلٰى ﴿٦٤﴾
قَالُوا

**52**- (Mûsa jê re) Got: Zanîna der barê wan de, li cem Xwedayê min di Lewhul Mehfûzê de ye. Xwedayê min ne şaş dike ne jî ji bîr dike.

**53**- Ew Xwedayê ku erd ji we re rast kiriye û ji we re tê de rê vekirine (ji bo çûn û hatinê hêsan kiriye) û baran ji esmên (ewran) ji we re barandiye. Vêca bi wê, me texlîtên giya û şînkatiyan (di tehm, bêhn, reng û feydeya xwe de) cur bi cur û cot deranîne.

**54**- Jê bixwin û terşên xwe lê biçêrînin. Bêguman di vê de ji bo aqilmendan nîşan hene.

**55**- Me hûn ji wê (erdê) afirandine û dîsa em ê we li wê vegerînin û careke din jî (piştî mirinê) em ê we jê derînin.

**56**- Sond be, me delîlên xwe tev nîşanî Firewn dan, vêca dîsa wî bawerî neanî û (li hemberî yekîtiya Xwedê Teala) asê ma.

**57**- Firewn got: Ey Mûsa? Ma tu ji me re hatî da ku bi sêrbaziya xwe me ji welatê me derxî?!

**58**- Ku welê be, teqez em ê jî sêrbaziyeke eynî weke wê li hemberî te bînin. Vêca di navbera me û xwe de demeke hevdîtinê li cihekî navendî diyar bike ku ne em ne jî tu xwe jê nedin paş.

**59**- (Mûsa) Got: Dema civanê we (û me) bila roja xemilandinê (roja cejnê) be (da ku xelk amade bibin) û di (dema) danê sibehê de mirov lê kom bibin.

**60**- Li ser vê yekê Firewn pişta xwe da Mûsa û çû, vêca hemî (sêrbaz û fêlbazên xwe) dan hev, di pey re (roja civanê) hat.

**61**- Mûsa ji wan re got: Wax li halê we be! Bi derewînî neweyî neavêjin ser Xwedê; (nebêjin ayetê wî sêr in)! Nexwe ew ê bi ezabekî (ji cem xwe) we bibe helakê û bêguman kesê lê aniye, ew perîşan bûye.

**62**- Vêca li hemberî vê yekê rewşa xwe di nav xwe de gotûbêj kirin û ji hev re kirin pistepist.

**63**- Gotin: Ev her du, bêguman du sêrbaz in, bes dixwazin bi sêrbaziya xwe we ji welatê we derxin û riya we ya ji hemû riyan çêtir ji holê rakin.

**64**- (Firewn ji bereka xwe re got:) Nexwe, fen û fûtên xwe li hev kom bikin, paşê ref bi ref werin! Bi rastî îro kî bi ser keve ew rizgar bûye.

قَالُوا يَا مُوسٰى اِمَّا اَنْ تُلْقِيَ وَاِمَّا اَنْ نَكُونَ اَوَّلَ مَنْ اَلْقٰى ﴿٦٥﴾
قَالَ بَلْ اَلْقُوا فَاِذَا حِبَالُهُمْ وَعِصِيُّهُمْ يُخَيَّلُ اِلَيْهِ مِنْ سِحْرِهِمْ
اَنَّهَا تَسْعٰى ﴿٦٦﴾ فَاَوْجَسَ ف۪ي نَفْسِه۪ خ۪يفَةً مُوسٰى ﴿٦٧﴾ قُلْنَا لَا تَخَفْ
اِنَّكَ اَنْتَ الْاَعْلٰى ﴿٦٨﴾ وَاَلْقِ مَا ف۪ي يَم۪ينِكَ تَلْقَفْ مَا صَنَعُواۜ اِنَّمَا
صَنَعُوا كَيْدُ سَاحِرٍۜ وَلَا يُفْلِحُ السَّاحِرُ حَيْثُ اَتٰى ﴿٦٩﴾ فَاُلْقِيَ السَّحَرَةُ
سُجَّدًا قَالُوا اٰمَنَّا بِرَبِّ هٰرُونَ وَمُوسٰى ﴿٧٠﴾ قَالَ اٰمَنْتُمْ لَهُ قَبْلَ
اَنْ اٰذَنَ لَكُمْۜ اِنَّهُ لَكَب۪يرُكُمُ الَّذ۪ي عَلَّمَكُمُ السِّحْرَۚ فَلَاُقَطِّعَنَّ اَيْدِيَكُمْ
وَاَرْجُلَكُمْ مِنْ خِلَافٍ وَلَاُصَلِّبَنَّكُمْ ف۪ي جُذُوعِ النَّخْلِۘ وَلَتَعْلَمُنَّ
اَيُّنَا اَشَدُّ عَذَابًا وَاَبْقٰى ﴿٧١﴾ قَالُوا لَنْ نُؤْثِرَكَ عَلٰى مَا جَٓاءَنَا مِنَ الْبَيِّنَاتِ
وَالَّذ۪ي فَطَرَنَا فَاقْضِ مَٓا اَنْتَ قَاضٍۜ اِنَّمَا تَقْض۪ي هٰذِهِ الْحَيٰوةَ الدُّنْيَاۜ
﴿٧٢﴾ اِنَّٓا اٰمَنَّا بِرَبِّنَا لِيَغْفِرَ لَنَا خَطَايَانَا وَمَٓا اَكْرَهْتَنَا عَلَيْهِ مِنَ السِّحْرِۜ
وَاللّٰهُ خَيْرٌ وَاَبْقٰى ﴿٧٣﴾ اِنَّهُ مَنْ يَأْتِ رَبَّهُ مُجْرِمًا فَاِنَّ لَهُ جَهَنَّمَۜ
لَا يَمُوتُ ف۪يهَا وَلَا يَحْيٰى ﴿٧٤﴾ وَمَنْ يَأْتِه۪ مُؤْمِنًا قَدْ عَمِلَ الصَّالِحَاتِ
فَاُو۬لٰٓئِكَ لَهُمُ الدَّرَجَاتُ الْعُلٰىۙ ﴿٧٥﴾ جَنَّاتُ عَدْنٍ تَجْر۪ي مِنْ
تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ خَالِد۪ينَ ف۪يهَاۜ وَذٰلِكَ جَزٰٓؤُا مَنْ تَزَكّٰى ﴿٧٦﴾

**65**- (Sêrbazan Got: Ey Mûsa! (Tu dixwazî pêşî) tu (gopalê xwe) biavêje yan jî em ê pêşî (gopal û werîsên xwe) biavêjin.

**66**- (Mûsa ji wan re) Got: Na, hûn pêşî biavêjin. (Vêca wan a bi xwe re di cih de avêt) wê demê werîs û gopalên wan, ji sêrbaziya wan, ji Mûsa re hate xuyakirin mîna ku ew (mar in û li ser zikê xwe) bi rê ve diçin.

**67**- Mûsa, ji nişka ve di nava xwe de tirsiya.

**68**- Me jê re got: Metirse! Yê ku bi ser bikeve teqez tu yî (ne ew in).

**69**- (Ey Mûsa) ya di destê xwe de biavêje da ku ew dar û werîsên wan dabelîne (û sêra wan betal bike). Bi rastî ya ku wan çêkiriye bes hîleya sêrbazan e (û ne rastî ye). Sêrbaz li ku dibe bila bibe bi ser nakeve.

**70**- Li hemberî vê rewşê, sêrbaz çûne sicûdê û gotin: Me bawerî bi Xwedayê Harûn û Mûsa anî.

**71**- (Firewn ji wan re) Got: Erê ma beriya ez destûra we bidim we bawerî pê anî? Bêguman ew mezinê we ye ku sêrbazî fêrî we kiriye. Sond be ku vêga ez ê dest û piyên we çep û rast jê bikim û ez ê we bi çiqlên darên xurmeyan ve daleqînim! Bi vî awayî hûn ê bibînin ka (ji min û Xwedayê Mûsa) ezabê kê dijwartir û mayîndetir e.

**72**- (Sêrbazan jê re) Gotin: Em ê te di ser mucîzeyên ku aşkera ji me re hatine û di ser Xwedê Teala re negirin, ew Xwedayê ku em afirandine. Nexwe ya tu dikî bike, bêguman desthilatiya te bes di jiyana vê cîhanê de ye.

**73**- Me bawerî bi Xwedayê xwe aniye da ku gunehên me û gunehê wê sêra ku bi kotekî te bi me da kirin bibexşîne. Xwedê Teala (ji bo me, ji te) çêtir e û (azara wî ji azara te) seraqetîtir e.

**74**- Bêguman rewş ev e; kî ku here ber destê Xwedayê xwe û ku sûcdar be vêca bêguman dojeh jê re ye. Ew tê de nedimire (ku ji ezab xelas bibe) ne jî (bi heyateke xweş û bextewar) dijî .

**75**- Kî jî bi îman here ber destê Xwedayê xwe û karên qenc jî kiribin ha ew ên welê ji bo wan mertebeyên bilind hene.

**76**- Ew (mertebe) bihiştên Ednê ne ku di binê wan de çem diherikin, dê seraqetî di wan de bimînin! Ha ev e, xelata wan kesên ku xwe (ji gunehan) paqij kirine.

وَلَقَدْ اَوْحَيْنَٓا اِلٰى مُوسٰٓى اَنْ اَسْرِ بِعِبَادٖى فَاضْرِبْ لَهُمْ طَرٖيقًا
فِى الْبَحْرِ يَبَسًاۙ لَا تَخَافُ دَرَكًا وَلَا تَخْشٰى ﴿٧٧﴾ فَاَتْبَعَهُمْ فِرْعَوْنُ
بِجُنُودِهٖ فَغَشِيَهُمْ مِنَ الْيَمِّ مَا غَشِيَهُمْؕ ﴿٧٨﴾ وَاَضَلَّ فِرْعَوْنُ
قَوْمَهُ وَمَا هَدٰى ﴿٧٩﴾ يَا بَنٖٓى اِسْرَٓائٖيلَ قَدْ اَنْجَيْنَاكُمْ مِنْ عَدُوِّكُمْ
وَوَاعَدْنَاكُمْ جَانِبَ الطُّورِ الْاَيْمَنَ وَنَزَّلْنَا عَلَيْكُمُ الْمَنَّ وَالسَّلْوٰى
﴿٨٠﴾ كُلُوا مِنْ طَيِّبَاتِ مَا رَزَقْنَاكُمْ وَلَا تَطْغَوْا فٖيهِ فَيَحِلَّ عَلَيْكُمْ
غَضَبٖىۚ وَمَنْ يَحْلِلْ عَلَيْهِ غَضَبٖى فَقَدْ هَوٰى ﴿٨١﴾ وَاِنّٖى لَغَفَّارٌ لِمَنْ
تَابَ وَاٰمَنَ وَعَمِلَ صَالِحًا ثُمَّ اهْتَدٰى ﴿٨٢﴾ وَمَٓا اَعْجَلَكَ عَنْ
قَوْمِكَ يَا مُوسٰى ﴿٨٣﴾ قَالَ هُمْ اُولَٓاءِ عَلٰٓى اَثَرٖى وَعَجِلْتُ اِلَيْكَ
رَبِّ لِتَرْضٰى ﴿٨٤﴾ قَالَ فَاِنَّا قَدْ فَتَنَّا قَوْمَكَ مِنْ بَعْدِكَ وَاَضَلَّهُمُ
السَّامِرِيُّ ﴿٨٥﴾ فَرَجَعَ مُوسٰٓى اِلٰى قَوْمِهٖ غَضْبَانَ اَسِفًاۚ قَالَ يَا قَوْمِ
اَلَمْ يَعِدْكُمْ رَبُّكُمْ وَعْدًا حَسَنًاؕ اَفَطَالَ عَلَيْكُمُ الْعَهْدُ
اَمْ اَرَدْتُمْ اَنْ يَحِلَّ عَلَيْكُمْ غَضَبٌ مِنْ رَبِّكُمْ فَاَخْلَفْتُمْ
مَوْعِدٖى ﴿٨٦﴾ قَالُوا مَٓا اَخْلَفْنَا مَوْعِدَكَ بِمَلْكِنَا وَلٰكِنَّا حُمِّلْنَٓا
اَوْزَارًا مِنْ زٖينَةِ الْقَوْمِ فَقَذَفْنَاهَا فَكَذٰلِكَ اَلْقَى السَّامِرِيُّ ﴿٨٧﴾

حزب

فَاَخْرَجَ

**77**- Sond be, me peyam da Mûsa ku bendeyên min (ên îsraîlî) bi şev (ji Misrê) derêxe, vêca li deryayê ji bo wan riyeke ziwa bigire, netirse ku (Firewn û leşkerê wî) bigihin we û ji tu tiştî netirse.

**78**- Li hemberî vê yekê Firewn bi leşkerên xwe ve da pey (şopa) wan, vêca derya li wan hate hev, lê çawa li wan hate hev?

**79**- Firewn, gelê xwe ji rê xist û ew neanî ser riya rast.

**80**- Gelî zarokên Îsraîl! Me hûn ji neyarê we rizgar kir û me civan da we ku li tenişta Çiyayê Tûr a rastê (Xwedê dê Tewratê bide we) û me gezo û sûsik ji we re anîn xwarê.

Berpeyvên vê ayetê cihûyên heyama Pêxemberê Rehmetê ne. Ellah Teala, ni'meta ku di çaxê Mûsa Pêxember de li kalên wan kiribû di bîra wan tîne û wan vedixwîne baweriya bi Nebî Muhemmed (s) û wan bi şêweyekî binbir ji nankorî û çavnebariyê hişyar dike.

**81**- Ji wan nimetên pak û xweş bixwin ew ên ku me bi rizqînî daye we, der barê de zêdegavî û nankoriyê nekin, vêca xezeba min dê li we bibare. Ew kesê ku xezeba min lê bibare, bêguman ew helak bûye.

**82**- Bêguman ez ji bo wî kesê ku poşman bibe, bawerî bîne û karê qenc bike, paşê di riya rast re here, pir bexşende û tobepêjrên im.

**83**- Ey Mûsa! Çi tiştî tu bi helebezê xistî ku te qewmê xwe ji paş ve hişt û tu hatî?

**84**- ( Mûsa) Got: Ew li pey min in dê bigihîjine min. Xwedayê min, bi bal te ve min lez kir da ku tu (ji min) razî bibî.

**85**- Xweda got: Piştî ku tu ji wan qetiyayî Me gelê te ceriband û Samirî ew ji rê birin.

**86**- Li hemberî vê yekê Mûsa, bi hêrs û xemgînî li gelê xwe vegeriya (û ji wan re) got: Gelê min! Ma qey Xwedayê we peymaneke rind û spehî nedabû we? Erê ma ew dem (çil roj) ji we re pir dirêj hat? Yan jî we xwest ku ji Xwedayê we xezebek li ser we bibare? Vêca ji peymana ku we da bû min, hûn vegeriyan.

**87**- (Gelê wî jê re) Gotin: Em, ne bi vîn û hêza xwe ji peymana ku me dabû te vegeriyan. Lê belê hinek zêr û zînetên misriyan li cem me bûn vêca me avêtin (êgir da ji gunehan paqij bibin), her wiha Samirî jî çi li cem hebû avêt.

فَاَخْرَجَ لَهُمْ عِجْلًا جَسَدًا لَهُ خُوَارٌ فَقَالُوا هٰذَٓا اِلٰهُكُمْ وَاِلٰهُ
مُوسٰى فَنَسِيَۜ ﴿٨٨﴾ اَفَلَا يَرَوْنَ اَلَّا يَرْجِعُ اِلَيْهِمْ قَوْلًا
وَلَا يَمْلِكُ لَهُمْ ضَرًّا وَلَا نَفْعًا ﴿٨٩﴾ وَلَقَدْ قَالَ لَهُمْ هٰرُونُ مِنْ
قَبْلُ يَا قَوْمِ اِنَّمَا فُتِنْتُمْ بِهٖۚ وَاِنَّ رَبَّكُمُ الرَّحْمٰنُ فَاتَّبِعُونِى
وَاَطِيعُٓوا اَمْرِى ﴿٩٠﴾ قَالُوا لَنْ نَبْرَحَ عَلَيْهِ عَاكِفِينَ حَتّٰى
يَرْجِعَ اِلَيْنَا مُوسٰى ﴿٩١﴾ قَالَ يَا هٰرُونُ مَا مَنَعَكَ اِذْ رَاَيْتَهُمْ
ضَلُّوا ﴿٩٢﴾ اَلَّا تَتَّبِعَنِۜ اَفَعَصَيْتَ اَمْرِى ﴿٩٣﴾ قَالَ يَبْنَؤُمَّ لَا تَاْخُذْ
بِلِحْيَتِى وَلَا بِرَاْسِىۚ اِنِّى خَشِيتُ اَنْ تَقُولَ فَرَّقْتَ بَيْنَ بَنِى
اِسْرَٓائِيلَ وَلَمْ تَرْقُبْ قَوْلِى ﴿٩٤﴾ قَالَ فَمَا خَطْبُكَ يَا سَامِرِىُّ
﴿٩٥﴾ قَالَ بَصُرْتُ بِمَا لَمْ يَبْصُرُوا بِهٖ فَقَبَضْتُ قَبْضَةً مِنْ
اَثَرِ الرَّسُولِ فَنَبَذْتُهَا وَكَذٰلِكَ سَوَّلَتْ لِى نَفْسِى ﴿٩٦﴾ قَالَ
فَاذْهَبْ فَاِنَّ لَكَ فِى الْحَيٰوةِ اَنْ تَقُولَ لَا مِسَاسَۖ وَاِنَّ
لَكَ مَوْعِدًا لَنْ تُخْلَفَهُۚ وَانْظُرْ اِلٰٓى اِلٰهِكَ الَّذِى ظَلْتَ عَلَيْهِ
عَاكِفًاۜ لَنُحَرِّقَنَّهُ ثُمَّ لَنَنْسِفَنَّهُ فِى الْيَمِّ نَسْفًا ﴿٩٧﴾ اِنَّمَا
اِلٰهُكُمُ اللّٰهُ الَّذِى لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَۜ وَسِعَ كُلَّ شَىْءٍ عِلْمًا ﴿٩٨﴾

**88**- (Samirî), ji wan re (peykerê) golikekê çêkir ku xwedîorîn bû (dema berê wê bidaya bayê mîna golikekê dioriya). Vêca (Samirî û peyrewên xwe ji wan re) gotin: Ha va ye Xwedayê we û Xwedayê Mûsa. Lê belê Mûsa ew ji bîr kiriye.

**89**- Erê ma ew nabînin ku ew (peykerê golikê) hîç nedikare bersiva gotina wan bide û ne dikare zerarê ji ser wan bide alî û ne jî dikare feydeyekê bide wan?

**90**- Bêguman, hê berî (Mûsa li wan vegere) Harûn ji wan re got: Gelî miletê min! Hûn bi vê golikê hatine ceribandin. Bêguman Xwedayê we ew Xwedayê ku rehman e. Nexwe bidine pey min û bi gotina min bikin.

**91**- Jê re gotin: Em qet dev ji perestina golikê bernadin, heyanî Mûsa vegere nav me em ê li serê berdewam bin!

**92**- (Mûsa pîştî ku vegeriya nava wan, ji birayê xwe Harûn re wiha) Got: Ey Harûn! Çaxê te dît ku ew ketin rêşaşiyê ew çi bû tu nehiştî...

**93**- Ku tu li pey min werî? Erê ma tu li ber fermana min rabûyî?

**94**- (Harûn jê re) Got: Ey kurê dayika min! Riha min û pora min mekişîne! Bi rastî ez ditirsiyam ku tu bibêjî Te dubendî xistiye nava zarokên Îsraîl û tu li hêviya gotina min nesekinî!

**95**- (Mûsa ji Samirî re) got: Samirî! Te ji bo çi ev kir?

**96**- Samirî got: Ya ku wan pê nizanibû min pê dizanî. Vêca min hinek ji wehya ku ji Pêxember re hatî wergirt, paşê min ew ji mêjiyê xwe avêt. Her wisa nefsa min ev kar ji min re çêkir û ji bo min xemiland.

**97**- (Mûsa ji Samirî re) Got: De here biqeşte ji vir! Êdî (cezayê te) heyanî tu li dinyayê bijî, tu dê bibêjî: Ne ez têkilî kesî dibim û bila tu kes jî têkilî min nebe. Bêguman ji bo te (ji bo ezabwergirtinê) civanek heye ku her tu jê nayê vederkirin. Li wî me'bûdê xwe binêre, ew ê ku te xwe dabû ser perestina wî, Ez sond dixwim ku em ê wî bişewitînin, paşê em ê xweliya wî biavêjin deryayê!

**98**- (Mûsa ji qewmê xwe re got:) Bêguman Xwedayê we bes Ellah Teala ye, ew ê ku ji wî pê ve tu xweda nîn e. Zanîna wî dor li her tiştî girtiye.

كَذٰلِكَ نَقُصُّ عَلَيْكَ مِنْ اَنْبَٓاءِ مَا قَدْ سَبَقَۚ وَقَدْ اٰتَيْنَاكَ مِنْ
لَدُنَّا ذِكْرًاۚ ﴿٩٩﴾ مَنْ اَعْرَضَ عَنْهُ فَاِنَّهُ يَحْمِلُ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ وِزْرًاۙ
﴿١٠٠﴾ خَالِدِينَ فِيهِۜ وَسَٓاءَ لَهُمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ حِمْلًاۙ ﴿١٠١﴾ يَوْمَ يُنْفَخُ
فِى الصُّورِ وَنَحْشُرُ الْمُجْرِمِينَ يَوْمَئِذٍ زُرْقًاۚ ﴿١٠٢﴾ يَتَخَافَتُونَ
بَيْنَهُمْ اِنْ لَبِثْتُمْ اِلَّا عَشْرًا ﴿١٠٣﴾ نَحْنُ اَعْلَمُ بِمَا يَقُولُونَ اِذْ يَقُولُ
اَمْثَلُهُمْ طَرِيقَةً اِنْ لَبِثْتُمْ اِلَّا يَوْمًاۚ ﴿١٠٤﴾ وَيَسْـَٔلُونَكَ عَنِ الْجِبَالِ
فَقُلْ يَنْسِفُهَا رَبِّى نَسْفًاۙ ﴿١٠٥﴾ فَيَذَرُهَا قَاعًا صَفْصَفًاۙ ﴿١٠٦﴾ لَا تَرٰى
فِيهَا عِوَجًا وَلَٓا اَمْتًا ﴿١٠٧﴾ يَوْمَئِذٍ يَتَّبِعُونَ الدَّاعِىَ لَا عِوَجَ لَهُۚ
وَخَشَعَتِ الْاَصْوَاتُ لِلرَّحْمٰنِ فَلَا تَسْمَعُ اِلَّا هَمْسًا ﴿١٠٨﴾ يَوْمَئِذٍ
لَا تَنْفَعُ الشَّفَاعَةُ اِلَّا مَنْ اَذِنَ لَهُ الرَّحْمٰنُ وَرَضِىَ لَهُ قَوْلًا ﴿١٠٩﴾
يَعْلَمُ مَا بَيْنَ اَيْدِيهِمْ وَمَا خَلْفَهُمْ وَلَا يُحِيطُونَ بِهِ عِلْمًا ﴿١١٠﴾
وَعَنَتِ الْوُجُوهُ لِلْحَىِّ الْقَيُّومِۜ وَقَدْ خَابَ مَنْ حَمَلَ ظُلْمًا ﴿١١١﴾
وَمَنْ يَعْمَلْ مِنَ الصَّالِحَاتِ وَهُوَ مُؤْمِنٌ فَلَا يَخَافُ ظُلْمًا وَلَا
هَضْمًا ﴿١١٢﴾ وَكَذٰلِكَ اَنْزَلْنَاهُ قُرْاٰنًا عَرَبِيًّا وَصَرَّفْنَا فِيهِ
مِنَ الْوَعِيدِ لَعَلَّهُمْ يَتَّقُونَ اَوْ يُحْدِثُ لَهُمْ ذِكْرًا ﴿١١٣﴾

فَتَعَالَى

**99**- Her wisa em hinekî ji agahiyên wan (umet) ên ku bihurîne ji te re radigihînin. Bêguman me ji cem xwe Quranek daye te.

**100**- Kî berê xwe ji wê (Quranê) vegerîne (û bawerî pê neyîne), muheqeq ew ê roja qiyametê barê gunehekî giran hilgire.

**101**- Ew tê de seraqetî dimînin û roja qiyametê ji bo wan çi barekî pîs e!

**102**- Roja ku di sûrê de tê pifkirin, wê rojê em gunehkaran diajon mehşerê ku ew reşûşînbûyî ne.

**103**- Di navbera xwe de bi hêdî dibêjin: Li dinyayê ji deh rojan pê ve em nemane.

**104**- Em wê dabaşa ku ew di nav xwe de dibêjin bêhtir dizanin, wê çaxê aqilmend û çêtirê wan dê bibêje: Hûn ji rojekê pê ve (li dinyayê) nemane.

**105**- Ew ji te der barê çiyan de (ku roja qiyametê dê çawa bibin) dipirsin. (Ji wan re) Bibêje: Xwedayê min dê ji bin ve wan rake, hûr û hêra bike û wan ber ba bixe.

**106**- Her wiha dê li cihê wan erdeke rast, hilû û rût bihêle.

**107**- Li wê derê hûn ê cihekî nizm û yekî bilind nebînin.

**108**- Wê rojê mirov li pey gaziya Xwedê diçin (meydana heşrê) û li ber (fermana) wî ranabin. Vêca ji bo hurmeta Xwedayê dilovan deng nizm bûne, vêca ji pistepistê pê ve tu denga seh nakî.

**109**- Wê rojê, ji wî kesê ku Xwedayê dilovan destûrê bidê û ji gotina wî qayîl bibe pê ve mehderiya tu kesî feydê nade tu kesê din.

**110**- Xwedayê Teala, bi kiryarên ku mirovan kiriyê û yên ku dê bikin jî dizane û ew tu car bi ser zanîna wî ve nabin.

**111**- (Wê rojê tu dibînî ku) hemû rû ji bo (Xweda)yê her sax û ragirê heyînê zebûn (û serpêl) bûne û bi rastî ew ên ku sitemkarî kirine (di wê rojê de) perîşan bûne.

**112**- Çi kesê kar û kiryarên rind bike û ku ew bawermend be, vêca bila ew ji zêdenivîsîna gunehên xwe û ji kêmnivîsîna xêrên xwe netirse.

**113**- Her wisa me Quran bi zimanê erebî (ji te re) hinartiye û me di vê Quranê de gelek hişyarî û gef (ên bi ezab) aşkera kirine, hêvî heye ku ew xwe (ji kufrê û gunehan) biparêzin, an jî ev (Quran) ji bo wan pend û şîretekê derîne rastê.

فَتَعَالَى اللّٰهُ الْمَلِكُ الْحَقُّ وَلَا تَعْجَلْ بِالْقُرْاٰنِ مِنْ قَبْلِ اَنْ يُقْضٰٓى
اِلَيْكَ وَحْيُهُ وَقُلْ رَبِّ زِدْن۪ي عِلْمًا ﴿١١٤﴾ وَلَقَدْ عَهِدْنَٓا اِلٰٓى اٰدَمَ
مِنْ قَبْلُ فَنَسِيَ وَلَمْ نَجِدْ لَهُ عَزْمًا ﴿١١٥﴾ وَاِذْ قُلْنَا لِلْمَلٰٓئِكَةِ
اسْجُدُوا لِاٰدَمَ فَسَجَدُٓوا اِلَّٓا اِبْل۪يسَ اَبٰى ﴿١١٦﴾ فَقُلْنَا يَٓا اٰدَمُ
اِنَّ هٰذَا عَدُوٌّ لَكَ وَلِزَوْجِكَ فَلَا يُخْرِجَنَّكُمَا مِنَ الْجَنَّةِ
فَتَشْقٰى ﴿١١٧﴾ اِنَّ لَكَ اَلَّا تَجُوعَ ف۪يهَا وَلَا تَعْرٰى ﴿١١٨﴾ وَاَنَّكَ لَا تَظْمَؤُا
ف۪يهَا وَلَا تَضْحٰى ﴿١١٩﴾ فَوَسْوَسَ اِلَيْهِ الشَّيْطَانُ قَالَ يَٓا اٰدَمُ
هَلْ اَدُلُّكَ عَلٰى شَجَرَةِ الْخُلْدِ وَمُلْكٍ لَا يَبْلٰى ﴿١٢٠﴾ فَاَكَلَا
مِنْهَا فَبَدَتْ لَهُمَا سَوْاٰتُهُمَا وَطَفِقَا يَخْصِفَانِ عَلَيْهِمَا مِنْ
وَرَقِ الْجَنَّةِ وَعَصٰٓى اٰدَمُ رَبَّهُ فَغَوٰى ﴿١٢١﴾ ثُمَّ اجْتَبٰيهُ رَبُّهُ
فَتَابَ عَلَيْهِ وَهَدٰى ﴿١٢٢﴾ قَالَ اهْبِطَا مِنْهَا جَم۪يعًا بَعْضُكُمْ
لِبَعْضٍ عَدُوٌّ فَاِمَّا يَأْتِيَنَّكُمْ مِنّ۪ي هُدًى فَمَنِ اتَّبَعَ هُدَايَ
فَلَا يَضِلُّ وَلَا يَشْقٰى ﴿١٢٣﴾ وَمَنْ اَعْرَضَ عَنْ ذِكْر۪ي فَاِنَّ
لَهُ مَع۪يشَةً ضَنْكًا وَنَحْشُرُهُ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ اَعْمٰى ﴿١٢٤﴾ قَالَ
رَبِّ لِمَ حَشَرْتَن۪ٓي اَعْمٰى وَقَدْ كُنْتُ بَص۪يرًا ﴿١٢٥﴾

**114**- Vêca ew Xwedayê hukimran ê desthilatedar ê heq, ji gotinên muşrikan pak û bilind e. (Ya Muhemmed!) Cebraîl heyanî wehya Xwedê (ji te re) neqedîne di (xwendina) Quranê de lez meke û bibêje; Xwedayê min, zanîna min zêde bike.

**115**- Sond be, hê berê jî me fermana (bi nexwarina ji darê) li Adem kiribû. Vêca wî (fermana me) ji bîr kir û me tu xweragirtin jî jê nedît.

Ellah Teala di cennetê de fêkiyê darekê li Adem qedexe kiribû, digel vê jî Adem ew qedexe ji bîr kir û bi navtêdana Şeytên ji wê darê xwar û bi vî awayî isyan kir.

**116**- Dema me ji firîşteyan re got,ji Ademî re herin secdê, ew di cih de çûne secdeyê, lê belê îblîs ew neçû secdeyê.

**117**- Li hemberî vê yekê me got: Ey Adem! Ev dijminê te û hevsera te ye. Zinhar bila we ji bihiştê dernexe, paşê tu yê azarê bikêşî!

**118**- (Ey Adem!) Vêga li vir, ji bo te ne birçîbûn heye ne jî tazîmayîn.

**119**- Tu tê de ne tî dibî ne jî germa tavê li te dide.

**120**- Lê belê şeytên weswese û guman xiste dilê Adem û jê re got: Ey Adem! Erê ma ez dara her û heriyê (ebediyetê) û milkê ku narize (û kevn nabe) nîşanî te nedim?

**121**- (Şeytên bi hîle û xapa ew xapandin) Vêca her duyan ji wê (darê) xwarin. Ewretê wan (şermegeha wan) ji wan ve hate xuyakirin û wan hewl da ku bi pelên bihiştê xwe binixumînin. (Bi vî awayî) Adem bêemriya Xwedayê xwe kir, vêca negihîşte hedefa xwe.

**122**- Paşê Xwedayê Adem ew (ji bo pêxemberiyê) bijart; toba wî pejirand û berê wî da riya rast.

**123**- (Xwedê Teala) Got: Hûn hemû (mirov û pelîd) pêkve, ji hev re dijmin, ji bihiştê dakevin (ser erdê)! Vêca eger ku ji cem min ji bo we pêxemberek hat, îcar kî bide pey pêxemberê min ew rêşaş û bedbext nabe.

**124**- Çi kesê ku berê xwe ji kitêba min vegerîne, bêguman jê re jiyaneke teng û tarî heye û em ê wî roja qiyametê koregom heşir bikin.

**125**- Ew dibêje: Xwedayê min! Çima te ez koregom heşir kirim? Hal ev e ku bi rastî ez li dinyayê bi çav bûm!

قَالَ كَذٰلِكَ اَتَتْكَ اٰيَاتُنَا فَنَسِيتَهَاۚ وَكَذٰلِكَ الْيَوْمَ تُنْسٰى ﴿١٢٦﴾
وَكَذٰلِكَ نَجْز۪ي مَنْ اَسْرَفَ وَلَمْ يُؤْمِنْ بِاٰيَاتِ رَبِّه۪ۜ وَلَعَذَابُ
الْاٰخِرَةِ اَشَدُّ وَاَبْقٰى ﴿١٢٧﴾ اَفَلَمْ يَهْدِ لَهُمْ كَمْ اَهْلَكْنَا قَبْلَهُمْ
مِنَ الْقُرُونِ يَمْشُونَ ف۪ي مَسَاكِنِهِمْۜ اِنَّ ف۪ي ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِاُو۬لِي
النُّهٰى ﴿١٢٨﴾ وَلَوْلَا كَلِمَةٌ سَبَقَتْ مِنْ رَبِّكَ لَكَانَ لِزَامًا وَاَجَلٌ
مُسَمًّىۜ ﴿١٢٩﴾ فَاصْبِرْ عَلٰى مَا يَقُولُونَ وَسَبِّحْ بِحَمْدِ رَبِّكَ قَبْلَ
طُلُوعِ الشَّمْسِ وَقَبْلَ غُرُوبِهَاۚ وَمِنْ اٰنَٓائِ الَّيْلِ فَسَبِّحْ وَاَطْرَافَ النَّهَارِ
لَعَلَّكَ تَرْضٰى ﴿١٣٠﴾ وَلَا تَمُدَّنَّ عَيْنَيْكَ اِلٰى مَا مَتَّعْنَا بِه۪ٓ اَزْوَاجًا
مِنْهُمْ زَهْرَةَ الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا لِنَفْتِنَهُمْ ف۪يهِۜ وَرِزْقُ رَبِّكَ خَيْرٌ
وَاَبْقٰى ﴿١٣١﴾ وَاْمُرْ اَهْلَكَ بِالصَّلٰوةِ وَاصْطَبِرْ عَلَيْهَاۜ لَا نَسْـَٔلُكَ رِزْقًاۜ
نَحْنُ نَرْزُقُكَۜ وَالْعَاقِبَةُ لِلتَّقْوٰى ﴿١٣٢﴾ وَقَالُوا لَوْلَا يَأْت۪ينَا بِاٰيَةٍ مِنْ
رَبِّه۪ۜ اَوَلَمْ تَأْتِهِمْ بَيِّنَةُ مَا فِي الصُّحُفِ الْاُو۫لٰى ﴿١٣٣﴾ وَلَوْ اَنَّٓا اَهْلَكْنَاهُمْ
بِعَذَابٍ مِنْ قَبْلِه۪ لَقَالُوا رَبَّنَا لَوْلَٓا اَرْسَلْتَ اِلَيْنَا رَسُولًا فَنَتَّبِعَ
اٰيَاتِكَ مِنْ قَبْلِ اَنْ نَذِلَّ وَنَخْزٰى ﴿١٣٤﴾ قُلْ كُلٌّ مُتَرَبِّصٌ فَتَرَبَّصُواۚ
فَسَتَعْلَمُونَ مَنْ اَصْحَابُ الصِّرَاطِ السَّوِيِّ وَمَنِ اهْتَدٰى ﴿١٣٥﴾

سُورَةُ

**126**- (Xwedê Teala) Dibêje: Rewş welê ye, lewra ayetên me ji te re hatin vêca te ew (avêtin pîşt xwe û) ji bîr kirin û her wisa îro tu jî dê werî jibîrkirin!

**127**- Bi vî awayî kesê ku (di arzûyên xwe de) destbelaviyê bike (ji Xwedê Teala re şirîkan çêke) û baweriyê bi ayetên Xwedayê xwe neyîne, em ceza dikin. Bêguman ezabê axîretê teqez dijwartir û seraqetîtir e.

**128**- Ma ji wan re diyar nebûye ku beriya wan me çiqas milet ji navê birin? Hal ev e ku ew di cih û warên wan de diçin û tên. Bêguman di vê de, ji aqildaran re gelek nîşan hene (ku ji wan îbret û ders bigirin).

**129**- Eger ji Xwedayê te peymana paşêxistina ezabdayîna wan nehatibûya dayîn û eger ji bo wan demeke navlêkirî nebûya, dê ezabê Xwedê li ser wan misoger bibûya.

**130**- (Ya Muhemmed!) Li hemberî tiştên ku ew dibêjin, xwe ragire û beriya derketina rojê (nimêja sibehê), beriya roj biçe ava (nimêja êvarê) û hinekî ji wextê şevê (nimêja îşayê) û ser û binê rojê (nimêja mexrib û nîvro) hemdê Xwedê bike û wî ji her kêmasiyê pak bidêre, da ku tu Xwedayê xwe qayîl bikî.

**131**- Zinhar, çavên xwe bernede wê xweşikiya jiyana cîhanê, ew a ku me daye kafir û yên mîna wan, da ku em wan pê biceribênin! Rizqê Xwedayê te çêtir e, hem jî seraqetîtir e.

**132**- Emrê ehlê xwe bike bi kirina nimêjê û li ser kirina wê xwe ragire! Em, rizqek ji te naxwazin; em rizqê te didin. Encama xêrê teqez ji ehlê teqwayê re ye.

**133**- Kafiran got: De bila (Muhemmed) ji Xwedayê xwe mucîzeyekê ji me re bîne (ku wî rast bidêre)? Erê ma daxuyaniyek der heqê Quranê de, di suhûfên pêşiyan de ji wan re nehatiye?

**134**- Eger beriya vê (Quranê) bi ezabekî, me ew ji navê bibirana, teqez dê wiha bigotina: Xwedayê me! Çima te ji me re pêxemberek neşand ku beriya em rezîl û riswa bibin, me bidaya pey ayetên te!

**135**- Bibêje: Her yek (ji me û ji we) çavnêriya (encamê) dike; de çavnêriyê bikin. Lê di nêz de hûn ê bizanin ka xwedanên riya rast kî ne û kî li ser riya heq rasterê ye.

## SÛREYÊ ENBIYA

Sûreyê Enbiya, sed û dozdeh (112) ayet e. Li Mekkê daketiye. Digel pir dabaşên din jî, ji ber ku sûre bi taybetî behsa hin pêxemberan û munasebetên wan ên ligel gelên wan kiriye, jê re Sûreyê Enbiya yanî Sûreyê Pêxemberan hatiye gotin.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

**1**- Ji bo însanan dema hesabwergirtina wan nêzîk bû. Hal ev e ku ew di nav xefletê de berê xwe (ji îmana pê) vedigerînin.

**2**- Çi dema ji Xwedayê wan, ji wan re ayeteke nû (ji Quranê) bihata, wan her ji tinaz ve lê guhdarî dikir.

**3**- Dilên wan (ji ramana wê) tune ye. Ew ên ku zalim in di navbera xwe de pistepist dikin û ji hev re dibêjin: Ev (Muhemmed) her ew jî mîna we mirovek e. Erê ma çawa hûn didin pey sêrbaziyekê û hûn têdigihîjin (ku ew sêrbazî ye).

**4**- (Pêxember ji wan re ) Got: Çiqas gotina ku li erd û esmên (tête gotin) Xwedayê min dizane û her ew e yê bihîzer û yê zana.

**5**- Gotin: Nexêr, ev xewnerojk in, na belkî wî Quran ji cem xwe ve lêaniye, na belkî ew şair e. Eger ne wisan e de ka bila ayetekê (mucîzeyekê) ji me re bîne, çawa ku ji pêxemberên berê re hatibûn.

**6**- Beriya van herçî welatekî ku me xelkê wî biriye helakê, bi sedema ku (piştî mucîze ji wan re hatin) her wan bawerî neaniye, erê ma vêca ev ê bawerî bînin?



سُورَةُ الْاَنْبِيَاءِ مَكِّيَّةٌ وَهِيَ
مِائَةٌ وَاثْنَتَا عَشْرَةَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ

اِقْتَرَبَ لِلنَّاسِ حِسَابُهُمْ وَهُمْ ف۪ي غَفْلَةٍ مُعْرِضُونَۚ ﴿١﴾ مَا يَأْت۪يهِمْ
مِنْ ذِكْرٍ مِنْ رَبِّهِمْ مُحْدَثٍ اِلَّا اسْتَمَعُوهُ وَهُمْ يَلْعَبُونَۙ ﴿٢﴾ لَاهِيَةً
قُلُوبُهُمْۜ وَاَسَرُّوا النَّجْوٰىۗ اَلَّذ۪ينَ ظَلَمُواۗ هَلْ هٰذَٓا اِلَّا بَشَرٌ
مِثْلُكُمْۚ اَفَتَأْتُونَ السِّحْرَ وَاَنْتُمْ تُبْصِرُونَ ﴿٣﴾ قَالَ رَبّ۪ي يَعْلَمُ
الْقَوْلَ فِي السَّمَٓاءِ وَالْاَرْضِۘ وَهُوَ السَّم۪يعُ الْعَل۪يمُ ﴿٤﴾ بَلْ قَالُٓوا
اَضْغَاثُ اَحْلَامٍ بَلِ افْتَرٰيهُ بَلْ هُوَ شَاعِرٌۚ فَلْيَأْتِنَا بِاٰيَةٍ كَمَٓا
اُرْسِلَ الْاَوَّلُونَ ﴿٥﴾ مَٓا اٰمَنَتْ قَبْلَهُمْ مِنْ قَرْيَةٍ اَهْلَكْنَاهَاۚ اَفَهُمْ
يُؤْمِنُونَ ﴿٦﴾ وَمَٓا اَرْسَلْنَا قَبْلَكَ اِلَّا رِجَالًا نُوح۪ٓي اِلَيْهِمْ فَسْـَٔلُٓوا
اَهْلَ الذِّكْرِ اِنْ كُنْتُمْ لَا تَعْلَمُونَ ﴿٧﴾ وَمَا جَعَلْنَاهُمْ جَسَدًا
لَا يَأْكُلُونَ الطَّعَامَ وَمَا كَانُوا خَالِد۪ينَ ﴿٨﴾ ثُمَّ صَدَقْنَاهُمُ
الْوَعْدَ فَاَنْجَيْنَاهُمْ وَمَنْ نَشَٓاءُ وَاَهْلَكْنَا الْمُسْرِف۪ينَ ﴿٩﴾
لَقَدْ اَنْزَلْنَٓا اِلَيْكُمْ كِتَابًا ف۪يهِ ذِكْرُكُمْۜ اَفَلَا تَعْقِلُونَ ﴿١٠﴾

**7**- (Ya Muhemmed!) Me beriya te ji mirovan her zilam bi pêxemberî şandine (me bi pêxemberî firîşte neşandine). Nexwe eger hûn (vê) nizanin ji ehlê zanînê bipirsin.

**8**- Me ew (pêxember) nekirin cesedên (bêruh) ku xwarinê naxwin û ew (li vê dinyayê) ebedî jî namînin.

**9**- Piştre, me ew peymana ku daye wan bi cih anî, vêca me ew û yên ku me ew xwestin rizgar kirin. Me yên (di kufr û zêdegaviyê de) musrif jî helak kirin.

**10**- Sond be, me kitêbeke wisa ji we re hinart ku rûmeta we (ya dinya û axretê) tê de ye. Ma hê jî hûn aqil nagirin?

وَكَمْ قَصَمْنَا مِنْ قَرْيَةٍ كَانَتْ ظَالِمَةً وَاَنْشَاْنَا بَعْدَهَا قَوْمًا
اٰخَرِينَ ﴿١١﴾ فَلَمَّٓا اَحَسُّوا بَاْسَنَٓا اِذَا هُمْ مِنْهَا يَرْكُضُونَ ﴿١٢﴾
لَا تَرْكُضُوا وَارْجِعُٓوا اِلٰى مَٓا اُتْرِفْتُمْ فِيهِ وَمَسَاكِنِكُمْ
لَعَلَّكُمْ تُسْـَٔلُونَ ﴿١٣﴾ قَالُوا يَا وَيْلَنَٓا اِنَّا كُنَّا ظَالِمِينَ ﴿١٤﴾ فَمَا زَالَتْ
تِلْكَ دَعْوٰيهُمْ حَتّٰى جَعَلْنَاهُمْ حَصِيدًا خَامِدِينَ ﴿١٥﴾ وَمَا خَلَقْنَا
السَّمَٓاءَ وَالْاَرْضَ وَمَا بَيْنَهُمَا لَاعِبِينَ ﴿١٦﴾ لَوْ اَرَدْنَٓا اَنْ نَتَّخِذَ
لَهْوًا لَاتَّخَذْنَاهُ مِنْ لَدُنَّٓا اِنْ كُنَّا فَاعِلِينَ ﴿١٧﴾ بَلْ نَقْذِفُ بِالْحَقِّ
عَلَى الْبَاطِلِ فَيَدْمَغُهُ فَاِذَا هُوَ زَاهِقٌ وَلَكُمُ الْوَيْلُ مِمَّا تَصِفُونَ
﴿١٨﴾ وَلَهُ مَنْ فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَمَنْ عِنْدَهُ لَا يَسْتَكْبِرُونَ
عَنْ عِبَادَتِهِ وَلَا يَسْتَحْسِرُونَ ﴿١٩﴾ يُسَبِّحُونَ الَّيْلَ وَالنَّهَارَ
لَا يَفْتُرُونَ ﴿٢٠﴾ اَمِ اتَّخَذُٓوا اٰلِهَةً مِنَ الْاَرْضِ هُمْ يُنْشِرُونَ ﴿٢١﴾ لَوْ كَانَ
فِيهِمَٓا اٰلِهَةٌ اِلَّا اللّٰهُ لَفَسَدَتَا فَسُبْحَانَ اللّٰهِ رَبِّ الْعَرْشِ عَمَّا يَصِفُونَ
﴿٢٢﴾ لَا يُسْـَٔلُ عَمَّا يَفْعَلُ وَهُمْ يُسْـَٔلُونَ ﴿٢٣﴾ اَمِ اتَّخَذُوا مِنْ دُونِهٓ
اٰلِهَةً قُلْ هَاتُوا بُرْهَانَكُمْ هٰذَا ذِكْرُ مَنْ مَعِيَ وَذِكْرُ مَنْ
قَبْلِي بَلْ اَكْثَرُهُمْ لَا يَعْلَمُونَ الْحَقَّ فَهُمْ مُعْرِضُونَ ﴿٢٤﴾
وَمَا

**11-** Me xelkên pir welatan ji ber ku ew zalim bûn ji navê birin, li dûv wan me hin xelkên din anîn meydanê.

**12-** Çi dema pêjna ezabê me dikirin, ha te dît bi lez ji berê direviyan.

**13-** (Firîşteyan jî ji wan re digot:) De nerevin! Li nimet û li warên xwe yên xweş vegerin! Belkî hûn bêne pirsyarkirin (ka ev a bi serê we de hat çi bû û ji bo çi bû?)

**14-** (Wan) Gotin: Wax li ya ku hatiye serê me! Bi rastî jî em mirovinên sitemkar bûn.

**15-** Her feryada wan wisa berdewam bû, heyanî ku me ew kirin mîna giyayê dirûtî û agirê vemirî.

**16-** Me erd û esman û yên di navbera wan de hene wek pêlîstok (û bêmefa) neafirandine (belkî me ew afirandin da ku em qudret û yekîtiya xwe nîşanî mirovan bidin).

**17-** Eger me bixwesta ku mijûlahiyekê ji xwe re bigirin me dê ew ji cem xwe bigirtaya. (Ev dê bibûya mijûlahiyeke munasibî nav û dengê me, belê em ne ji wan in ku vê bikin.)

**18-** Na, belkî em ê heqiyê biavêjin ser batilî, vêca ew ê mêjiyê wî belav bike. Vêca tu dinêrî ku wa ye batil ji holê rabûye. (Gelî kafiran!) Wax li rewşa we be, ji ber wan wesfên ku hûn (nisbetî bal Xwedê ve) dikin!

**19-** Çi tiştên li erd û asîmanan hene yên Xwedê ne û ew ên li cem Xwedayê te (ku melayîket in) li ser îbadetê Xwedê, xwe mezin nadêrin û jê nawestin jî.

**20-** Bi şev û rojê Xwedê Teala pak didêrin û sist jî nabin.

**21-** Erê ma wan (pûtperestan) li erdê ji xwe re hin Xweda girtine ku ew ê (miriyan) sax bikin?

**22-** Eger li her duyan (asîman û erdê) ji Xwedê Teala pê ve xwedayekî din hebûya, teqez dê (pergala erd û esmên) xera bibûya. Nexwe Xwedayê Erş(ê bilind) ji ya ku pê diwesifînin pak û dûr e.

**23-** Xwedê Teala ji ya ku dike nayê pirsyarkirin, lê belê ew ê ji tiştên ku bikin dê bêne pirsyarkirin.

**24-** Yan jî ma ji bilî Xwedê ji xwe re îlahinên din girtine? Bibêje: De heydê delîla xwe bînin (eger bi rastî hûn rast dibêjin)! Ha va ye kitêba ligel min û kitêbên wan pêxemberên beriya min jî. Na, belkî pirên wan rastiyê nizanin, ji ber vê yekê berê xwe jê vedigerînin.

وَمَٓا اَرْسَلْنَا مِنْ قَبْلِكَ مِنْ رَسُولٍ اِلَّا نُوحٖٓى اِلَيْهِ اَنَّهُ لَٓا اِلٰهَ
اِلَّٓا اَنَا فَاعْبُدُونِ ﴿٢٥﴾ وَقَالُوا اتَّخَذَ الرَّحْمٰنُ وَلَدًا سُبْحَانَهُ بَلْ
عِبَادٌ مُكْرَمُونَ ﴿٢٦﴾ لَا يَسْبِقُونَهُ بِالْقَوْلِ وَهُمْ بِاَمْرِهٖ يَعْمَلُونَ
﴿٢٧﴾ يَعْلَمُ مَا بَيْنَ اَيْدٖيهِمْ وَمَا خَلْفَهُمْ وَلَا يَشْفَعُونَ اِلَّا لِمَنِ
ارْتَضٰى وَهُمْ مِنْ خَشْيَتِهٖ مُشْفِقُونَ ﴿٢٨﴾ وَمَنْ يَقُلْ مِنْهُمْ اِنّٖى
اِلٰهٌ مِنْ دُونِهٖ فَذٰلِكَ نَجْزٖيهِ جَهَنَّمَ كَذٰلِكَ نَجْزِى الظَّالِمٖينَ
﴿٢٩﴾ اَوَلَمْ يَرَ الَّذٖينَ كَفَرُٓوا اَنَّ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ كَانَتَا
رَتْقًا فَفَتَقْنَاهُمَا وَجَعَلْنَا مِنَ الْمَٓاءِ كُلَّ شَیْءٍ حَیٍّ اَفَلَا
يُؤْمِنُونَ ﴿٣٠﴾ وَجَعَلْنَا فِى الْاَرْضِ رَوَاسِىَ اَنْ تَمٖيدَ بِهِمْ
وَجَعَلْنَا فٖيهَا فِجَاجًا سُبُلًا لَعَلَّهُمْ يَهْتَدُونَ ﴿٣١﴾ وَجَعَلْنَا
السَّمَٓاءَ سَقْفًا مَحْفُوظًا وَهُمْ عَنْ اٰيَاتِهَا مُعْرِضُونَ ﴿٣٢﴾
وَهُوَ الَّذٖى خَلَقَ الَّيْلَ وَالنَّهَارَ وَالشَّمْسَ وَالْقَمَرَ كُلٌّ
فٖى فَلَكٍ يَسْبَحُونَ ﴿٣٣﴾ وَمَا جَعَلْنَا لِبَشَرٍ مِنْ قَبْلِكَ الْخُلْدَ
اَفَاِنْ مِتَّ فَهُمُ الْخَالِدُونَ ﴿٣٤﴾ كُلُّ نَفْسٍ ذَٓائِقَةُ الْمَوْتِ
وَنَبْلُوكُمْ بِالشَّرِّ وَالْخَيْرِ فِتْنَةً وَاِلَيْنَا تُرْجَعُونَ ﴿٣٥﴾

**25**- (Ya Muhemmed!) Beriya te, me çiqas pêxember şandine, her me peyxam daye wan ku "Ji Min pê ve tu xweda nîn e û îbadeta min bikin."

**26**- (Kafiran) Gotin: Xwedayê ku rehman e ji xwe re (ji firîşteyan) zarok girtiye. Haşa! Ew ji vê pak û dûr e. (Na) belkî firîşte bendeyên Xwedê yên rûmetdar in.

**27**- Ew beriya (ku fermanê ji Xwedê bistînin) napeyivin û ew tenê bi fermana wî tevdigerin. (Xwedê Teala çi fermanê li wan bike bi ya wî dikin).

**28**- Xwedê Teala ya ku wan kiriye û ya ku dê bikin jî dizane. Ew, ji wan kesên ku Xwedê Teala qayîl e (ku mehderiya wan bête kirin) pê ve mehderiya tu kesê (din) nakin. Ew ji tirsa Xwedê Teala dilerizin!

**29**- Ji firîşteyan kî bibêje: 'Ji bilî Ellah Teala ez Xwedê me!' Em ê bi dojehê wî ceza bikin. Her wiha em ê (pûtperestên) zalim jî ceza bikin!

**30**- Erê ma ew ên kafir bûne, qey nabînin ku berê erd û asîman bi hev ve bûn, vêca Me ew ji hev veqetandin û ma ew nizanin ku Me her tiştê zindî ji avê afirandiye? Ma hê jî ew bawerî nayînin?

**31**- Me di erdê de çiyayên mikûm çêkirin da ku erd xwe pê bigire û neheje. Me rêkên fireh tê de vekirin da ku ew (di rêwîtiyên xwe de) bi ser mebestên xwe ve bibin (û bigihîjin armancên xwe).

**32**- Me asîman jî kiriye banekî saxlem û parastî. Vêca ew berê xwe ji nîşanên asîmanan vedigerînin.

**33**- Ew ê ku şev û ro, roj û heyv afirandine Xwedê Teala ye. Her yek ji wan di rêgeha xwe de avjeniyê dike (û bi lez digerin).

**34**- (Ya Muhemmed!) Me beriya te ebediyet nedaye tu kesî. Erê ma vêga ku tu mirî, ew ê her û her sax bimînin?

**35**- Her zindî (li cîhanê) dê mirinê tehm bike û em ê we bi şer û xêrê îmtîhan bikin û hûn ê dawî her li me bêne vegerandin.

وَإِذَا رَاٰكَ الَّذِينَ كَفَرُوا إِنْ يَتَّخِذُونَكَ إِلَّا هُزُوًا أَهٰذَا
الَّذِي يَذْكُرُ اٰلِهَتَكُمْ وَهُمْ بِذِكْرِ الرَّحْمٰنِ هُمْ
كَافِرُونَ ٣٦ خُلِقَ الْإِنْسَانُ مِنْ عَجَلٍ سَاُرِيكُمْ
اٰيَاتِي فَلَا تَسْتَعْجِلُونِ ٣٧ وَيَقُولُونَ مَتٰى هٰذَا الْوَعْدُ إِنْ
كُنْتُمْ صَادِقِينَ ٣٨ لَوْ يَعْلَمُ الَّذِينَ كَفَرُوا حِينَ
لَا يَكُفُّونَ عَنْ وُجُوهِهِمُ النَّارَ وَلَا عَنْ ظُهُورِهِمْ
وَلَا هُمْ يُنْصَرُونَ ٣٩ بَلْ تَأْتِيهِمْ بَغْتَةً فَتَبْهَتُهُمْ فَلَا
يَسْتَطِيعُونَ رَدَّهَا وَلَا هُمْ يُنْظَرُونَ ٤٠ وَلَقَدِ اسْتُهْزِئَ
بِرُسُلٍ مِنْ قَبْلِكَ فَحَاقَ بِالَّذِينَ سَخِرُوا مِنْهُمْ مَا
كَانُوا بِهِ يَسْتَهْزِؤُنَ ٤١ قُلْ مَنْ يَكْلَؤُكُمْ بِاللَّيْلِ وَالنَّهَارِ
مِنَ الرَّحْمٰنِ بَلْ هُمْ عَنْ ذِكْرِ رَبِّهِمْ مُعْرِضُونَ ٤٢
أَمْ لَهُمْ اٰلِهَةٌ تَمْنَعُهُمْ مِنْ دُونِنَا لَا يَسْتَطِيعُونَ
نَصْرَ أَنْفُسِهِمْ وَلَا هُمْ مِنَّا يُصْحَبُونَ ٤٣ بَلْ مَتَّعْنَا
هٰؤُلَاءِ وَاٰبَاءَهُمْ حَتّٰى طَالَ عَلَيْهِمُ الْعُمُرُ أَفَلَا يَرَوْنَ أَنَّا
نَأْتِي الْأَرْضَ نَنْقُصُهَا مِنْ أَطْرَافِهَا أَفَهُمُ الْغَالِبُونَ ٤٤

قُلْ

**36**- Ew ên ku kafir bûne dema te dibînin bes henekê xwe bi te dikin û dibêjin: Ma ev e, ew ê ku bi nebaşî behsa mabûdên we dike? Hal ev e ku ew kitêba Xwedayê dilovan mandel dikin.

Li gorî hatiye rîwayetkirin, Pêxemberê Xwedê (s) di ber Ebû Sufyan û Ebû Cehil re derbas bû ku wan jî sohbet dikir. Dema Ebû Cehil Pêxember dît, kenî û ji Ebû Sufyan re got: Ev pêxamberê zaroyên Ebdul Menaf e! Ebû Sufyan bi hêrs lê vegerand: Qey tu layiq nabînî ku ji zaroyên Ebdul Menaf re pêxemberek hebe? Vêca Pêxemberê Xwedê (s) li Ebû Cehil vegeriya û gotiyê: Çi qas ez te dibînim, tu her li ber xwe nakevî heta tişta ku hatî serê apê te Welîd kurê Muxîre neyê serê te jî. Vêca di bara vê mijarê de ev ayet nazil bû.

**37**- Însan (bi tebîetê xwe) lezgînî hatiye afirandin, ez ê ayetên xwe nîşanî we bidim vêca lez li (ezab) nekin.

**38**- (Kafir ji bawermendan re) Dibêjin: Eger bi rastî hûn rastgo ne, ka kengê ew ezabê te peyman pê daye, tê cih?

**39**- Ew ên kafir bûne, eger bizaniyana ku dema (roja qiyametê) dê nikaribin agir ji rûyên xwe û piştên xwe bidin alî û arîkariya wan jî dê neyê kirin, (helbet wan dê ev negota û dê bi lez ezab nexwesta).

**40**- Belkî, (qiyamet) ji nişka ve tê wan ku wan sergêj dihêle (û dibizdîne). Êdî ew nikarin wê vegerînin û muhlet(a tobeyê û lêborînê) jî, ji wan re nayê dayîn.

**41**- (Ya Muhemmed!) Sond be, bi wan pêxemberên beriya te jî tinaz hatiye kirin, vêca ew ezabê ku tinazê xwe pê dikirin hate ser wan tinazkeran û xistin nav xwe.

**42**- Bibêje: (Eger ezab bi ser we de hat) ew kî ye ku bi şev û rojê we ji (ezabê) Xwedê yê ku rehman e biparêze? Na! Belkî ew berê xwe ji kitêba Xwedayê xwe vedigerînin.

**43**- Yan jî, ma ji bo wan hin îlah hene ku li hemberî (ezabê) me, wan biparêzin? (Hal ev e, ew tiştên ku ew dibêjin Xweda ne), ew nikarin arîkariya xwe bi xwe jî bikin û ew ê ji (ezabê) me jî neyêne parastin.

**44**- Erê, me qencî li wan û digel bav û bapîrên wan kir, heyanî ku di xweşiyê de jiyaneke dirêj derbas kirin. Erê ma vêca ew nabînin (û têdigihîjin) ku em erda wan ji hawir ve li wan teng dikin. Vêca ma ew in yên serkeftî (yan pêxember û hevalên xwe ne)?

قُلْ اِنَّمَٓا اُنْذِرُكُمْ بِالْوَحْيِ وَلَا يَسْمَعُ الصُّمُّ الدُّعَٓاءَ اِذَا
مَا يُنْذَرُونَ ﴿٤٥﴾ وَلَئِنْ مَسَّتْهُمْ نَفْحَةٌ مِنْ عَذَابِ رَبِّكَ
لَيَقُولُنَّ يَا وَيْلَنَٓا اِنَّا كُنَّا ظَالِمِينَ ﴿٤٦﴾ وَنَضَعُ الْمَوَازِينَ
الْقِسْطَ لِيَوْمِ الْقِيٰمَةِ فَلَا تُظْلَمُ نَفْسٌ شَيْـًٔا وَاِنْ كَانَ
مِثْقَالَ حَبَّةٍ مِنْ خَرْدَلٍ اَتَيْنَا بِهَا وَكَفٰى بِنَا حَاسِبِينَ ﴿٤٧﴾
وَلَقَدْ اٰتَيْنَا مُوسٰى وَهٰرُونَ الْفُرْقَانَ وَضِيَٓاءً وَذِكْرًا لِلْمُتَّقِينَ
﴿٤٨﴾ اَلَّذِينَ يَخْشَوْنَ رَبَّهُمْ بِالْغَيْبِ وَهُمْ مِنَ السَّاعَةِ مُشْفِقُونَ
﴿٤٩﴾ وَهٰذَا ذِكْرٌ مُبَارَكٌ اَنْزَلْنَاهُ اَفَاَنْتُمْ لَهُ مُنْكِرُونَ ﴿٥٠﴾ وَلَقَدْ
اٰتَيْنَٓا اِبْرٰهِيمَ رُشْدَهُ مِنْ قَبْلُ وَكُنَّا بِهِ عَالِمِينَ ﴿٥١﴾ اِذْ قَالَ
لِاَبِيهِ وَقَوْمِهِ مَا هٰذِهِ التَّمَاثِيلُ الَّتِٓي اَنْتُمْ لَهَا عَاكِفُونَ ﴿٥٢﴾
قَالُوا وَجَدْنَٓا اٰبَٓاءَنَا لَهَا عَابِدِينَ ﴿٥٣﴾ قَالَ لَقَدْ كُنْتُمْ اَنْتُمْ
وَاٰبَٓاؤُكُمْ فِي ضَلَالٍ مُبِينٍ ﴿٥٤﴾ قَالُٓوا اَجِئْتَنَا بِالْحَقِّ اَمْ اَنْتَ
مِنَ اللَّاعِبِينَ ﴿٥٥﴾ قَالَ بَلْ رَبُّكُمْ رَبُّ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ
الَّذِي فَطَرَهُنَّ وَاَنَا عَلٰى ذٰلِكُمْ مِنَ الشَّاهِدِينَ ﴿٥٦﴾
وَتَاللّٰهِ لَاَكِيدَنَّ اَصْنَامَكُمْ بَعْدَ اَنْ تُوَلُّوا مُدْبِرِينَ ﴿٥٧﴾

45- Bibêje: Ez bes bi wehyê we hişyar dikim. Lê belê ew ên ker dema ku ew têne hişyarkirin, dengê vê bangê nabihîzin.

46- Sond be, eger ji ezabê Xwedayê te tiştekî hindik bihingive wan, hîç guman tune ye ku dê bibêjin: Wax li me be! Bi rastî em mirovên zalim bûn!

47- Em ê roja qiyametê şehînên edaletê deynin. Êdî li tu kesî bi tu awayî dê neheqî neyê kirin. Çendî ew (karê ku hatiye kirin) bi qasî giraniya libeke xerdelê be jî em ê dîsa wî bînin (ber şehîna edaletê) û ji aliyê hesabbîniyê ve em bes in.

48- Sond be, me ew Furqan (kitêba cudaker ya ku heq û batilî ji hev diqetîne) daye Mûsa û Harûn ku ji mutteqiyan re ronahî û şîret e.

Mebest ji Furqanê ew Tewrat e ku di wê çaxê de heq û batil, helal û heram ji hev vediqetand û ji mutteqiyên wê heyamê re ronahî û şîret bû.

49- Ew (mutteqî)yên ku di nependî de ji Xwedayê xwe ditirsin û ji (cansojiyên) qiyametê jî bitirs in.

50- Ha ev (Quran) şîreteke bi xêr û bêr e ku me ew hinartiye. Erê ma vêga hûn wê mandel dikin?

51- Sond be, hê berê Me hîdayet, dawerî û duristî dabû Îbrahîm û me pê zanîbû (ku ew babetê vê ye).

52- Dema Îbrahîm ji bavê xwe û gelê xwe re got: "Ma ev pûtên ku hûn wan dihebînin çi ne?"

53- Gotin: Me bav û bapîrên xwe dîtin ku perestina wan dikirin, (vêca em jî li pey rêç û şopa wan diçin).

54- (Îbrahîm ji wan re) Got: Bêguman hûn û bavên we jî di rêşaşiyeke aşkera de ne.

55- Gotin: Ma te rastî ji me re aniye, yan jî tu ji lîstikbazan î?

56- (Îbrahîm ji wan re) Got: Ne wisan e, belkî Xwedayê we (yê ku babetê îbadetê ye) Xwedayê erd û asîmanan e. Ew xwedayê ku ew (erd û asîman) afirandine û ez ji vê (ya ku min gotî) re ji şahidan im.

57- Ez bi Xwedê Teala sond dixwim ku piştî hûn bi pişt min bikevin û herin, ez ê pûtê we bişkînim!

فَجَعَلَهُمْ جُذَاذًا اِلَّا كَبِيرًا لَهُمْ لَعَلَّهُمْ اِلَيْهِ يَرْجِعُونَ ﴿٥٨﴾
قَالُوا مَنْ فَعَلَ هٰذَا بِاٰلِهَتِنَا اِنَّهُ لَمِنَ الظَّالِمِينَ ﴿٥٩﴾ قَالُوا
سَمِعْنَا فَتًى يَذْكُرُهُمْ يُقَالُ لَهُ اِبْرٰهِيمُ ﴿٦٠﴾ قَالُوا فَأْتُوا
بِهِ عَلٰى اَعْيُنِ النَّاسِ لَعَلَّهُمْ يَشْهَدُونَ ﴿٦١﴾ قَالُوا ءَاَنْتَ
فَعَلْتَ هٰذَا بِاٰلِهَتِنَا يَا اِبْرٰهِيمُ ﴿٦٢﴾ قَالَ بَلْ فَعَلَهُ كَبِيرُهُمْ هٰذَا
فَسْـَٔلُوهُمْ اِنْ كَانُوا يَنْطِقُونَ ﴿٦٣﴾ فَرَجَعُوا اِلٰى اَنْفُسِهِمْ
فَقَالُوا اِنَّكُمْ اَنْتُمُ الظَّالِمُونَ ﴿٦٤﴾ ثُمَّ نُكِسُوا عَلٰى رُؤُسِهِمْ
لَقَدْ عَلِمْتَ مَا هٰؤُلَٓاءِ يَنْطِقُونَ ﴿٦٥﴾ قَالَ اَفَتَعْبُدُونَ مِنْ دُونِ
اللّٰهِ مَا لَا يَنْفَعُكُمْ شَيْـًٔا وَلَا يَضُرُّكُمْ ﴿٦٦﴾ اُفٍّ لَكُمْ
وَلِمَا تَعْبُدُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ اَفَلَا تَعْقِلُونَ ﴿٦٧﴾ قَالُوا حَرِّقُوهُ
وَانْصُرُوا اٰلِهَتَكُمْ اِنْ كُنْتُمْ فَاعِلِينَ ﴿٦٨﴾ قُلْنَا يَا نَارُ
كُونِى بَرْدًا وَسَلَامًا عَلٰى اِبْرٰهِيمَ ﴿٦٩﴾ وَاَرَادُوا بِهِ
كَيْدًا فَجَعَلْنَاهُمُ الْاَخْسَرِينَ ﴿٧٠﴾ وَنَجَّيْنَاهُ وَلُوطًا اِلَى
الْاَرْضِ الَّتِى بَارَكْنَا فِيهَا لِلْعَالَمِينَ ﴿٧١﴾ وَوَهَبْنَا لَهُ
اِسْحٰقَ وَيَعْقُوبَ نَافِلَةً وَكُلًّا جَعَلْنَا صَالِحِينَ ﴿٧٢﴾

وَجَعَلْنَاهُمْ

**58**- Vêca Îbrahîm, ê mezin ne tê de ew parçe parçe kirin, da ku lê vegerin (û ecz û rêşaşiya wan diyar bibe.)

**59**- (Çi dema dîtin ku pûtên wan hatine şikandin) Gotin: Kê ev bi îlahên me kiriye, yê ew kirî bêguman ew ji zaliman e.

**60**- (Ji hev re) Gotin: Me bihîst ku ciwanekî (bi xerabî) behsa wan dikir, jê re dibêjin Îbrahîm (hebe nebe wî ew şikandine!)

**61**- Gotin: Nexwe di cih de Îbrahîm bînin pêşberî çavê xelkê, da ku xelk beşdarî ezabê wî bibe.

**62**- (Jê re) gotin: Ma te ev bi Xwedayên me kiriye ey Îbrahîm?!

**63**- (Li xwe neanî der û) Got: Belkî vî mezinê wan kiriye (û ev rewş aniye serê wan). De heydê ji wan bipirsin; eger (bi rastî) ew dipeyivin!

**64**- Li hemberî vê yekê, hişyar bûn û li xwe zivirîn û ji xwe re gotin: Hûn zalim bi xwe ne (ku hûn wan pûtên ku nikarin bipeyivin dihebînin).

**65**- Piştre dîsa li kufra xwe vegeriyan û jê re gotin: Tu bi xwe jî dizanî ku ev pût napeyivin (vêca çawa tu ji me re dibejî ji wan bipirsin).

**66**- Îbrahîm (ji wan re) got: Ku welê ye, ma hûn ê ji bilî Xwedê Teala wan pûtên ku ew ne dikarin tu feydeyekê bidin we ne jî zerarekê bidin we bihebînin. (eger hûn perestina wî nekin jî)?

**67**- Uf ji we re be û ji wan pûtên ku ji bilî Xwedê hûn îbadeta wan dikin! Erê ma hûn tênagihîjin (ku ev pût ne babetê îbadetê ne)?

**68**- (Ji hev re) gotin: Eger hûn dixwazin tiştekî pê bikin, wî bişewitînin û arîkariya îlahên xwe bikin!

**69**- Me got: Ey agiro! Li ser Îbrahîm bibe hênikahî û selametî!

**70**- Wan xwest (bi şewatê) dehfekê li ber Îbrahîm deynin, lê belê me ew kirin ên ku (di armanca xwe de) ziyan kirine.

**71**- Me ew (Îbrahîm) û Lût ji wan reha kirin, me ew gihandine wî warê ku me ji xelkê re bi xêr û bêr kiriye.

**72**- Me (ji kerema xwe) Îshaq dayê û wek bexşîşeke zêdeyî (daxwaza wî jî) Yaqûb dayê. Me her yek ji wan kiriye (pêxemberekî) qencîkar.

وَجَعَلْنَاهُمْ اَئِمَّةً يَهْدُونَ بِاَمْرِنَا وَاَوْحَيْنَا اِلَيْهِمْ فِعْلَ
الْخَيْرَاتِ وَاِقَامَ الصَّلٰوةِ وَاِيتَاءَ الزَّكٰوةِ وَكَانُوا لَنَا
عَابِدِينَ ﴿٧٣﴾ وَلُوطًا اٰتَيْنَاهُ حُكْمًا وَعِلْمًا وَنَجَّيْنَاهُ مِنَ الْقَرْيَةِ
الَّتِى كَانَتْ تَعْمَلُ الْخَبَائِثَ اِنَّهُمْ كَانُوا قَوْمَ سَوْءٍ
فَاسِقِينَ ﴿٧٤﴾ وَاَدْخَلْنَاهُ فِى رَحْمَتِنَا اِنَّهُ مِنَ الصَّالِحِينَ ﴿٧٥﴾
وَنُوحًا اِذْ نَادٰى مِنْ قَبْلُ فَاسْتَجَبْنَا لَهُ فَنَجَّيْنَاهُ وَاَهْلَهُ مِنَ
الْكَرْبِ الْعَظِيمِ ﴿٧٦﴾ وَنَصَرْنَاهُ مِنَ الْقَوْمِ الَّذِينَ كَذَّبُوا
بِاٰيَاتِنَا اِنَّهُمْ كَانُوا قَوْمَ سَوْءٍ فَاَغْرَقْنَاهُمْ اَجْمَعِينَ ﴿٧٧﴾
وَدَاوُدَ وَسُلَيْمٰنَ اِذْ يَحْكُمَانِ فِى الْحَرْثِ اِذْ نَفَشَتْ فِيهِ
غَنَمُ الْقَوْمِ وَكُنَّا لِحُكْمِهِمْ شَاهِدِينَ ﴿٧٨﴾ فَفَهَّمْنَاهَا
سُلَيْمٰنَ وَكُلًّا اٰتَيْنَا حُكْمًا وَعِلْمًا وَسَخَّرْنَا مَعَ دَاوُدَ
الْجِبَالَ يُسَبِّحْنَ وَالطَّيْرَ وَكُنَّا فَاعِلِينَ ﴿٧٩﴾ وَعَلَّمْنَاهُ
صَنْعَةَ لَبُوسٍ لَكُمْ لِتُحْصِنَكُمْ مِنْ بَأْسِكُمْ فَهَلْ اَنْتُمْ
شَاكِرُونَ ﴿٨٠﴾ وَلِسُلَيْمٰنَ الرِّيحَ عَاصِفَةً تَجْرِى بِاَمْرِهِ اِلَى
الْاَرْضِ الَّتِى بَارَكْنَا فِيهَا وَكُنَّا بِكُلِّ شَيْءٍ عَالِمِينَ ﴿٨١﴾

**73**- Me ew kirine pêşewa, bi fermana me riya rast nîşanî (xelkê) didin û me ji wan re peyam şand da ku karên qenc bikin, nimêjê bi duristî bikin û zekatê bidin û ew her ji me re îbadetkar bûn.

**74**- Me Lût jî kire pêşewa, me pêxemberti, têgihiştin û zanîn dabûyê û me ew ji wî welatê ku (xelkê wî) karên xerab dikirin rizgar kir. Bêguman xelkê wî welatî karên neqenc dikirin û jirêderketî bûn (kurbaz/hemcînsbaz bûn hem jî rêbir bûn).

**75**- Me Lût xiste nav rehma xwe, bêguman ew ji qencan bû.

**76**- Nûh jî berî van pêxemberan (Îbrahîm û Lût) gazî Xwedayê xwe kir (ku em wî rizgar bikin û gelê wî helak bikin), vêca me jî gazîya wî qebûl kir, paşê me ew û xelkên wî (yên ku di keştiyê de pê re bûn) ji tengasiya mezin rizgar kirin.

**77**- Me ew ji (şerê) wî gelê ku bawerî bi ayetên me nedianîn parast. Bêguman ew xelkekî neqenc bû; ji ber vê yekê me ew tev binav û xerq kirin.

**78**- Serpêhatiya Dawid û Suleyman jî di bîra wan bîne, wê dema ku der barê çandiniyekê de hukim didan, wê dema pezê hin kesan bi şevê ketibû navê û zerar dabûyê û em li ser hukimdayîna her duyan şahid bûn û me pê dizanî.

**79**- Me ev (hukimdayîn) bi Suleyman dabû zanîn. Me pêxemberî, zanîn û têgihîştin dabû her duyan. Me ji Dawud re çiya û teyr berdest kirin ku ligel wî tesbîh û hemdê Xwedê dikirin û ya ku em bivên em wê dikin.

**80**- Me Dawud ji bo we hînî çêkirina zirxan kir, da ku (ew zirx) we ji şerê neyarên we biparêze. Erê ma vêca hûn şêkiriya Xwedê nakin?

**81**- Me ji Suleyman re jî bayê dijwar (berdest kiribû) ku bi fermana wî ew diçû wî welatê ku me bi xêr û bêr kiribû û me bi her tiştî dizanî.

وَمِنَ الشَّيَاطِينِ مَنْ يَغُوصُونَ لَهُ وَيَعْمَلُونَ عَمَلاً
دُونَ ذٰلِكَ وَكُنَّا لَهُمْ حَافِظِينَ ﴿٨٢﴾ وَاَيُّوبَ اِذْ نَادٰى
رَبَّهُ اَنِّي مَسَّنِيَ الضُّرُّ وَاَنْتَ اَرْحَمُ الرَّاحِمِينَ ﴿٨٣﴾
فَاسْتَجَبْنَا لَهُ فَكَشَفْنَا مَا بِهِ مِنْ ضُرٍّ وَاٰتَيْنَاهُ اَهْلَهُ
وَمِثْلَهُمْ مَعَهُمْ رَحْمَةً مِنْ عِنْدِنَا وَذِكْرٰى لِلْعَابِدِينَ
﴿٨٤﴾ وَاِسْمٰعِيلَ وَاِدْرِيسَ وَذَا الْكِفْلِ كُلٌّ مِنَ
الصَّابِرِينَ ﴿٨٥﴾ وَاَدْخَلْنَاهُمْ فِي رَحْمَتِنَا اِنَّهُمْ مِنَ
الصَّالِحِينَ ﴿٨٦﴾ وَذَا النُّونِ اِذْ ذَهَبَ مُغَاضِبًا فَظَنَّ
اَنْ لَنْ نَقْدِرَ عَلَيْهِ فَنَادٰى فِي الظُّلُمَاتِ اَنْ لَا اِلٰهَ اِلَّا اَنْتَ
سُبْحَانَكَ اِنِّي كُنْتُ مِنَ الظَّالِمِينَ ﴿٨٧﴾ فَاسْتَجَبْنَا
لَهُ وَنَجَّيْنَاهُ مِنَ الْغَمِّ وَكَذٰلِكَ نُنْجِي الْمُؤْمِنِينَ ﴿٨٨﴾
وَزَكَرِيَّا اِذْ نَادٰى رَبَّهُ رَبِّ لَا تَذَرْنِي فَرْدًا وَاَنْتَ خَيْرُ
الْوَارِثِينَ ﴿٨٩﴾ فَاسْتَجَبْنَا لَهُ وَوَهَبْنَا لَهُ يَحْيٰى
وَاَصْلَحْنَا لَهُ زَوْجَهُ اِنَّهُمْ كَانُوا يُسَارِعُونَ فِي الْخَيْرَاتِ
وَيَدْعُونَنَا رَغَبًا وَرَهَبًا وَكَانُوا لَنَا خَاشِعِينَ ﴿٩٠﴾

وَالَّتِي

**82**- Me ji Suleyman re îblîs (berdest kiribûn) ku ji bo wî xwe noqavî dikirin (gewher dertanîn) û ji bilî vê hin karên din jî (avasazî) dikirin. Me ew di bin çavdêriyê de digirtin (da ku ya çêkirin car din xera nekin).

**83**- Eyûb jî, dema gazî Xwedayê xwe kir; (Xwedêyo!) Derdekî giran bi min girtiye û tu dilovantirîn dilovanan î!

**84**- Vêca me duayê Eyûb qebûl kir, ew derdê pê girtî me jê bir û me kesên mala wî (keç û kurên wî), digel van jî bi qasî wan hinekî din jî, ji dilovaniya xwe danê, da ku îbadetkar di bîra xwe bînin û bêhna xwe fireh bikin.

**85**- Îsmaîl, Îdrîs û Zulkifil jî di bîr bîne ku ev hemû jî ji sebirkêşan bûn.

**86**- Me ew xistin nav rehmeta xwe, teqez ew ji salihan bûn.

**87**- Zennûn (xwediyê masî; Yûnus) jî di bîr bîne ku ew bi hêrs (ji nava gelê xwe) çû, ji wî we ye ku em ê wî hîç nexin tengiyê. Paşê di nava tarîtiyan de (tarîtiya şevê, tarîtiya deryayê û tarîtiya di zikê masî de) wiha niyaz kir û got: (Xwedêyo!) Ji te pê ve tu Xweda nîn in, ji her kêmasiyê tu pak û paqij î, teqez ez ji sitemkaran im!

**88**- Li hemberî vê yekê me bergerîna Yûnus pejirand û me ew ji kederê rizgar kir û her wiha em ê bawermendan jî rizgar bikin.

**89**- Zekeriya jî di bîr bîne ku ew wiha li ber Xwedayê xwe geriya (û got:) Xwedayê min! Min bi tenê nehêle û Tu çêtirînê mîratgiran î.

**90**- Me bergerîna Zekeriya jî pejirand û me Yehya (bi kurinî) dayê û me jê re jina wî jî ducanî kir (ku berê ew ducanî nedibû). Bi rastî wan di karên qenc de dilezand, ji tirsa ezab û bi hêviya qenciyên me li ber me digeriyan û wan (bi îbadetê) xwe ji me re xwe dişikandin û li ber fermanên me amade bûn.

وَالَّت۪ٓي اَحْصَنَتْ فَرْجَهَا فَنَفَخْنَا ف۪يهَا مِنْ رُوحِنَا
وَجَعَلْنَاهَا وَابْنَهَٓا اٰيَةً لِلْعَالَم۪ينَ ﴿٩١﴾ اِنَّ هٰذِه۪ٓ
اُمَّتُكُمْ اُمَّةً وَاحِدَةًۘ وَاَنَا رَبُّكُمْ فَاعْبُدُونِ ﴿٩٢﴾
وَتَقَطَّعُٓوا اَمْرَهُمْ بَيْنَهُمْۜ كُلٌّ اِلَيْنَا رَاجِعُونَ ﴿٩٣﴾ فَمَنْ
يَعْمَلْ مِنَ الصَّالِحَاتِ وَهُوَ مُؤْمِنٌ فَلَا كُفْرَانَ
لِسَعْيِه۪ۚ وَاِنَّا لَهُ كَاتِبُونَ ﴿٩٤﴾ وَحَرَامٌ عَلٰى قَرْيَةٍ
اَهْلَكْنَاهَٓا اَنَّهُمْ لَا يَرْجِعُونَ ﴿٩٥﴾ حَتّٰٓى اِذَا فُتِحَتْ
يَأْجُوجُ وَمَأْجُوجُ وَهُمْ مِنْ كُلِّ حَدَبٍ يَنْسِلُونَ
﴿٩٦﴾ وَاقْتَرَبَ الْوَعْدُ الْحَقُّ فَاِذَا هِيَ شَاخِصَةٌ اَبْصَارُ
الَّذ۪ينَ كَفَرُواۜ يَا وَيْلَنَا قَدْ كُنَّا ف۪ي غَفْلَةٍ
مِنْ هٰذَا بَلْ كُنَّا ظَالِم۪ينَ ﴿٩٧﴾ اِنَّكُمْ وَمَا تَعْبُدُونَ
مِنْ دُونِ اللّٰهِ حَصَبُ جَهَنَّمَۜ اَنْتُمْ لَهَا وَارِدُونَ ﴿٩٨﴾ لَوْ
كَانَ هٰٓؤُ۬لَٓاءِ اٰلِهَةً مَا وَرَدُوهَاۜ وَكُلٌّ ف۪يهَا خَالِدُونَ
﴿٩٩﴾ لَهُمْ ف۪يهَا زَف۪يرٌ وَهُمْ ف۪يهَا لَا يَسْمَعُونَ ﴿١٠٠﴾ اِنَّ الَّذ۪ينَ
سَبَقَتْ لَهُمْ مِنَّا الْحُسْنٰىٓ اُو۬لٰٓئِكَ عَنْهَا مُبْعَدُونَ ﴿١٠١﴾

**91**- Meryemê jî di bîr bîne, ew a ku namûsa xwe bi îfet parastiye. Me li Cibrîl ferman kir ku pif bike wê (vêca me bi Îsa ducanî kir) û me ew û kurê wê ji xelkê re kirin nîşan (li ser mezinahî û desthilatdariya Xwadê Teala).

**92**- Bêguman dînê van pêxemberan (ji Adem heyanî Muhemmed) yek dîn e (ku ew îslam e) û Ez jî Xwedayê we me, nexwe ji bo min îbadetê bikin.

**93**- (Lê belê peyrewên pêxemberan) di nav xwe de, der barê karên (dînê) xwe de bi hev ketin. Ew tev dê li me vegerin.

**94**- Êdî kî ku karên qenc bike û ew bawermend be, vêca xebata wî winda nabe. Bêguman em wê jê re dinivîsin.

**95**- Li xelkê welatekî ku me (ji ber neqenciya wan) ew ji navê biribin heram e ku ew careke din vegerine dinyayê.

**96**- Heta wextê (seda/sûra) yacûc û macûcan vedibê û ew ji her cihê bilind ve dadikevin, tên.

**97**- Dema rabûna piştî mirinê (qiyamet) nêzîk bû, di cih de ew kesên ku kafir bûne çavên wan beloq dimînin! (Dibêjin:) Wax li halê me be! Bi rastî haya me ji vê (rojê) tune bû, belkî zêdeyî vê jî em zalim bûn.

**98**- Bêguman hûn (gelî muşrikan) û ji bilî Xwedê Teala ew pûtên ku hûn wan dihebînin ardûyên dojehê ne. Hûn ê (digel wan) herinê.

**99**- Eger bi rastî ew pût Xweda bûna dê neçûna dojehê. Hal ev e ku ew tev (perestyar û perestraw) di dojehê de seraqetî ne.

**100**- Di dojehê de, ji bo wan (ji ber dijwariya ezabê wê) nalenaleke pir dijwar heye û ew li wê derê (tu tiştê dî) nabihîzin.

**101**- Bêguman ew ên ku berî niha peymana rindiyê me ji bo wan daye, ew ji dojehê dûr in.



**102**- Ew qîjîna dojehê jî nabihîzin, di nava nimetên ku dilê wan bibije de her û her dimînin.

**103**- Tirsa mezin jî (ya roja qiyametê) wan xemgîn nake. Melaîket wan pêşwazî dikin (û ji wan re dibêjin:) Ha ev e, ew roja we (ya bextewariyê) ku peymana wê ji we re hatibû dayîn.

**104**- Wê roja ku em ê esmên bipêçin mîna pêçandina rûpelên kitêban. Em ê dîsa mirovan vejînin ka çawa cara pêşîn me mirov afirandibûn. Ev peymaneke li ser me ye, bêguman em ê (peymana xwe) bi cih bînin.

**105**- Sond be, me piştî Tewratê di Zebûrê de jî nivîsiye, bêguman evdên min ên qencîkar dê bibin wêrtên erdê.

**106**- Ha di vê (Quranê) de, ji bo xelkekî ku bi duristî îbadeta me bike pendeke bêkêmasî û tekûz heye.

**107**- (Hey Muhemmed!) Me, tu ji temamê alemê re şand, bes da tu li ser wan bibî rehmet û dilovanî.

**108**- (Ji pûtperestan re) Bibêje: Bêguman wehya ku ji min re hatî bes ev e; Xwedayê we bes xwedayekî bi tenê ye, vêca (ji fermanên wî re) berdest bibin.

**109**- Eger ku ew berê xwe (ji îslamê) vegerînin, êdî (ji wan re) bibêje: Min, hûn hemû bi fermanên Xwedê wekhev agahdar kirin. Êdî ez nizanim ew civanê ku peymana wê ji we re hatiye dayîn (ku roja qiyametê û ezabê wê ye) nêzîk e, yan jî dûr e (lê belê ew ê her bê).

**110**- Bêguman Xwedê Teala gotina aşkera jî dizane û ya ku hûn vedişêrin jî dizane.

**111**- Ez nizanim belkî jî ew (paşxistina ezab) ji we re îmtihanek be (ka hûn ê çawa tevbigerin) û dibe ku heyanî demeke navlêkirî xweşiyek be jî.

**112**- (Pêxember) Got: Xwedêyo! Di navbera min û van de bi heqqî hukim bike. Xwedayê me, ewê ku rehman e, li hemberî ya ku hûn der barê me de dibêjin, arîkarê me ye.

## SÛREYÊ HECC

Sûreyê Hecc, heftê û heşt (78) ayet e. Ji ayeta 19'em û pê de şeş ayet li Medînê, yên din jî li Mekkê daketine. Ji ber ku di vî sûreyî de behsa heccê tê kirin jê re Sûreyê Hecc hatiye gotin.

Ev Sûret, du taybetmendiyên wî hene ku mirov wan bi hev re di sûreyên din de nabîne. Ji wan yek ev e; ew bi girîngî li ser aliyê hiqûqî yên wekî destûra şer, hukmên heccê, qurban, fermana cîhadê û li ser pir tiştên din jî radiweste. Taybetmendiya duyem jî ev e ku bi awayekî darîçav li ser mijara bîr û baweriyê, yekîtiya Xwedê, hişyarî, tirsandin, saxbûna piştî mirinê, padaş û sezayê, temaşegeh û cansojiyên roja qiyametê radiweste. Ji ber ku sûreyî ev her du mijar bi hev re ragihandine, hin aliman ew ji sûreyên hevbeşên ku hem li Mekkê hem jî li Medînê nazil bûyîn, jimartine. Sûret, dawiyê numûneyekê ji bo îbadetê muşrikan a bo pûtan tîne û dide zanîn ku ev pûtên wan nikarin mêşekê jî bixuliqînin, jixwe ji vê neke behs ku ew bikarin mirovekî bi guh û çav biaferînin. Her wiha gazî li mirovan dike ku bidin pey dînê Îbrahîm Xelîl ku ew keleha îmanê û hîmê tewhîdê ye.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilòvîn

1- Gelî mirovan! Xwe ji (ezabê) Xwedayê xwe biparêzin! Bêguman erdheja roja qiyametê bûyereke mezin e!

2- Roja ku hûn wê (erdhejê) bibînin, her dayîka şîrdar ji şîrmija xwe bêhay dibe û her jina li halekî berê xwe diavêje. Tu mirovan dibînî ku serxweş in. Ew ne serxweş in, lê belê ezabê Xwedê pir dijwar e!

3- Ji mirovan hin hene ku der barê Xwedê de bêzanebûn guftûgo dikin û (di vê mijarê de) didin pey her şeytanê rikdar.

4- Hukim li ser pelîd hatiye dayîn; kî ku wî ji xwe re bike dost û arîkar, muheqeq ew ê riya rast li ber winda bike û ew ê berê wî bide riya agirê bipêt.



بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ اتَّقُوا رَبَّكُمْۚ اِنَّ زَلْزَلَةَ السَّاعَةِ شَيْءٌ عَظ۪يمٌ
﴿١﴾ يَوْمَ تَرَوْنَهَا تَذْهَلُ كُلُّ مُرْضِعَةٍ عَمَّٓا اَرْضَعَتْ حزب
وَتَضَعُ كُلُّ ذَاتِ حَمْلٍ حَمْلَهَا وَتَرَى النَّاسَ سُكَارٰى
وَمَا هُمْ بِسُكَارٰى وَلٰكِنَّ عَذَابَ اللّٰهِ شَد۪يدٌ ﴿٢﴾ وَمِنَ
النَّاسِ مَنْ يُجَادِلُ فِي اللّٰهِ بِغَيْرِ عِلْمٍ وَيَتَّبِعُ كُلَّ شَيْطَانٍ
مَر۪يدٍۙ ﴿٣﴾ كُتِبَ عَلَيْهِ اَنَّهُ مَنْ تَوَلَّاهُ فَاَنَّهُ يُضِلُّهُ وَيَهْد۪يهِ
اِلٰى عَذَابِ السَّع۪يرِ ﴿٤﴾ يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ اِنْ كُنْتُمْ ف۪ي
رَيْبٍ مِنَ الْبَعْثِ فَاِنَّا خَلَقْنَاكُمْ مِنْ تُرَابٍ ثُمَّ مِنْ
نُطْفَةٍ ثُمَّ مِنْ عَلَقَةٍ ثُمَّ مِنْ مُضْغَةٍ مُخَلَّقَةٍ وَغَيْرِ مُخَلَّقَةٍ
لِنُبَيِّنَ لَكُمْۜ وَنُقِرُّ فِي الْاَرْحَامِ مَا نَشَٓاءُ اِلٰٓى اَجَلٍ مُسَمًّى
ثُمَّ نُخْرِجُكُمْ طِفْلًا ثُمَّ لِتَبْلُغُٓوا اَشُدَّكُمْۚ وَمِنْكُمْ
مَنْ يُتَوَفّٰى وَمِنْكُمْ مَنْ يُرَدُّ اِلٰٓى اَرْذَلِ الْعُمُرِ لِكَيْلَا يَعْلَمَ
مِنْ بَعْدِ عِلْمٍ شَيْـًٔاۜ وَتَرَى الْاَرْضَ هَامِدَةً فَاِذَٓا اَنْزَلْنَا عَلَيْهَا
الْمَٓاءَ اهْتَزَّتْ وَرَبَتْ وَاَنْبَتَتْ مِنْ كُلِّ زَوْجٍ بَه۪يجٍ ﴿٥﴾

5- Gelî mirovan! Eger hûn ji 'saxbûna piştî mirinê' gumandar bin (berê xwe bidine xuliqandina xwe ya ewil); bêguman me hûn (pêşî) ji axê, piştre ji dilopek av, piştre ji xwîna meyandî, piştre ji parçeyek goşt afirandiye ku xulqiyeta wî di navbera kifşbûn û nekifşbûnê de bû, da ku em (qudreta xwe ya bêsînor) ji we re aşkera bikin û da ku em wî (parçeyê goşt) ku em bixwazin heya demeke navlêkirî di malzarokê de bi cih dikin; piştre em ê wek zarokan we (ji zikê dayîkên we) derînin. Piştre ji bo hûn bigihîjin çaxê xurtiya xwe (em we hin bi hin mezin dikin). Hin ji we dê (hê biçûk) bimirin û hin ji we dê bimînin heta pîr û kal bibin; hetanî ku piştî zanînê ew tiştekî nizanibe. Tu ser erdê jî dibînî ku ew hişk û hola ye, lê belê dema ku em avê dadixin ser wê ew diwerime, bilind dibe û ji her texlîtî şînahiya spehî derdixe holê.

ذٰلِكَ بِاَنَّ اللّٰهَ هُوَ الْحَقُّ وَاَنَّهُ يُحْيِ الْمَوْتٰى وَاَنَّهُ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ
قَد۪يرٌ ﴿٦﴾ وَاَنَّ السَّاعَةَ اٰتِيَةٌ لَا رَيْبَ ف۪يهَا وَاَنَّ اللّٰهَ يَبْعَثُ مَنْ
فِي الْقُبُورِ ﴿٧﴾ وَمِنَ النَّاسِ مَنْ يُجَادِلُ فِي اللّٰهِ بِغَيْرِ عِلْمٍ
وَلَا هُدًى وَلَا كِتَابٍ مُن۪يرٍ ﴿٨﴾ ثَانِيَ عِطْفِه۪ لِيُضِلَّ عَنْ سَب۪يلِ
اللّٰهِ لَهُ فِي الدُّنْيَا خِزْيٌ وَنُذ۪يقُهُ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ عَذَابَ الْحَر۪يقِ
﴿٩﴾ ذٰلِكَ بِمَا قَدَّمَتْ يَدَاكَ وَاَنَّ اللّٰهَ لَيْسَ بِظَلَّامٍ لِلْعَب۪يدِ ﴿١٠﴾
وَمِنَ النَّاسِ مَنْ يَعْبُدُ اللّٰهَ عَلٰى حَرْفٍ فَاِنْ اَصَابَهُ خَيْرٌ اطْمَاَنَّ
بِه۪ وَاِنْ اَصَابَتْهُ فِتْنَةٌ انْقَلَبَ عَلٰى وَجْهِه۪ خَسِرَ الدُّنْيَا وَالْاٰخِرَةَ
ذٰلِكَ هُوَ الْخُسْرَانُ الْمُب۪ينُ ﴿١١﴾ يَدْعُوا مِنْ دُونِ اللّٰهِ مَا لَا يَضُرُّهُ
وَمَا لَا يَنْفَعُهُ ذٰلِكَ هُوَ الضَّلَالُ الْبَع۪يدُ ﴿١٢﴾ يَدْعُوا لَمَنْ ضَرُّهُ
اَقْرَبُ مِنْ نَفْعِه۪ لَبِئْسَ الْمَوْلٰى وَلَبِئْسَ الْعَش۪يرُ ﴿١٣﴾ اِنَّ اللّٰهَ يُدْخِلُ
الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ جَنَّاتٍ تَجْر۪ي مِنْ تَحْتِهَا
الْاَنْهَارُ اِنَّ اللّٰهَ يَفْعَلُ مَا يُر۪يدُ ﴿١٤﴾ مَنْ كَانَ يَظُنُّ اَنْ لَنْ
يَنْصُرَهُ اللّٰهُ فِي الدُّنْيَا وَالْاٰخِرَةِ فَلْيَمْدُدْ بِسَبَبٍ اِلَى السَّمَاءِ
ثُمَّ لْيَقْطَعْ فَلْيَنْظُرْ هَلْ يُذْهِبَنَّ كَيْدُهُ مَا يَغ۪يظُ ﴿١٥﴾

وَكَذٰلِكَ

**6**- Ev rewşa hatî gotin, ji ber ku Xwedê Teala ew bi xwe heq e û yê ku miriyan sax dike ew e û ew li ser her tiştî qadir e.

**7**- Bêguman roja qiyametê dê her bê ku tê de qet guman tune û muheqeq Xwedê Teala miriyên di goran de dê vejîne .

**8**- Hin ji mirovan hene ku bê zanîn, bê rêber û bê kitêbeke ronahîker der barê Xwedê Teala de têdikoşe.

**9**- Ji bo (xelkê) ji riya Xwedê Teala derxe (bi qauretî) li kêleka xwe dizivire (û heqiyê qebûl nake). Ji wî re li cîhanê riswatiyek heye, li qiyametê jî em ê ezabê şewatok bi wî bidin çêjandin.

**10**- (Jê re tê gotin:) Ha ev (riswatî û ezabê bişewat) jî, ji ber vê ye ku te bi her du destên xwe kiriye (û li pêşiya xwe) şandiye. Teqez Xwedê Teala li bendeyên xwe zilmê nake.

**11**- Hin ji mirovan hene ku ne ji dil îbadeta Xwedê Teala dikin, vêca eger qenciyek li wî bibe pê kêfxweş dibe û eger belayek bi ser de were rûyê xwe diguherîne (ji dîn derdikeve). Bi vê rewşê li dinya û axretê ziyan kiriye. Ha xesirîna aşkera ev bi xwe ye.

**12**- Ew ji bilî Xwedê ji wî (pûtî) re îbadet dike, ewê ku ne dikare zerarê bide û ne jî dikare feydê bide wî. Ha ew rêşaşiya dûr ev e.

**13**- Ew perestina yekî dike ku (li gorî aqil) zerara wî ji feydeya wî nêzîktir e. Ew (ê ku mirovê kafir perestina wî dike) çi pîs arîkar e û çi pîs heval e!

**14**- Bêguman Xwedê, dê wan kesên ku bawerî anîn û karên qenc kirin bixe bihiştên ku di binê wan re çem diherikin. Bêguman Xwedê Teala tiştê ku bivê dê bike.

**15**- Çi kesê guman bike ku Xwedê Teala li dinya û axretê arîkariya pêxemberê xwe nake, vêca bila ew kes werîsekî bi jor ve daleqîne, serê xwe têxê, paşê xwe bixeniqîne, (vêca bi vî awayî ji kîna xwe ya li hemberî Pêxember bila xwe bikuje!). Êdî bila binêre, ma gelo fenda wî, ew a ku wî hêrs dike ji holê radike?

وَكَذٰلِكَ اَنْزَلْنَاهُ اٰيَاتٍ بَيِّنَاتٍ وَاَنَّ اللّٰهَ يَهْدِي مَنْ يُرِيدُ
﴿١٦﴾ اِنَّ الَّذِينَ اٰمَنُوا وَالَّذِينَ هَادُوا وَالصَّابِئِينَ وَالنَّصَارٰى
وَالْمَجُوسَ وَالَّذِينَ اَشْرَكُوا اِنَّ اللّٰهَ يَفْصِلُ بَيْنَهُمْ يَوْمَ
الْقِيٰمَةِ اِنَّ اللّٰهَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ شَهِيدٌ ﴿١٧﴾ اَلَمْ تَرَ اَنَّ اللّٰهَ
يَسْجُدُ لَهُ مَنْ فِي السَّمٰوَاتِ وَمَنْ فِي الْاَرْضِ وَالشَّمْسُ
وَالْقَمَرُ وَالنُّجُومُ وَالْجِبَالُ وَالشَّجَرُ وَالدَّوَابُّ وَكَثِيرٌ مِنَ
النَّاسِ وَكَثِيرٌ حَقَّ عَلَيْهِ الْعَذَابُ وَمَنْ يُهِنِ اللّٰهُ فَمَا
لَهُ مِنْ مُكْرِمٍ اِنَّ اللّٰهَ يَفْعَلُ مَا يَشَاءُ ﴿١٨﴾ هٰذَانِ خَصْمَانِ
اخْتَصَمُوا فِي رَبِّهِمْ فَالَّذِينَ كَفَرُوا قُطِّعَتْ لَهُمْ ثِيَابٌ مِنْ
نَارٍ يُصَبُّ مِنْ فَوْقِ رُؤُسِهِمُ الْحَمِيمُ ﴿١٩﴾ يُصْهَرُ بِهِ مَا
فِي بُطُونِهِمْ وَالْجُلُودُ ﴿٢٠﴾ وَلَهُمْ مَقَامِعُ مِنْ حَدِيدٍ ﴿٢١﴾ كُلَّمَا
اَرَادُوا اَنْ يَخْرُجُوا مِنْهَا مِنْ غَمٍّ اُعِيدُوا فِيهَا وَذُوقُوا
عَذَابَ الْحَرِيقِ ﴿٢٢﴾ اِنَّ اللّٰهَ يُدْخِلُ الَّذِينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا
الصَّالِحَاتِ جَنَّاتٍ تَجْرِي مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ يُحَلَّوْنَ فِيهَا
مِنْ اَسَاوِرَ مِنْ ذَهَبٍ وَلُؤْلُؤًا وَلِبَاسُهُمْ فِيهَا حَرِيرٌ ﴿٢٣﴾

**16**- Her wiha me Quran bi ayetên aşkera hinartiye. Teqez Xwedê Teala yê bivê wî rasterê dike.

**17**-Bêguman ên ku wan bawerî aniye û yên ku bûne cihû, sabiîn (stêrperest), fileh (xirîstiyan), mecûsî (agirperest) û yên ku pûtperest in, bêguman Xwedê Teala dê roja qiyametê di navbera wan de hukim bike. Bêguman Xwedê Teala li ser her tiştî bîner e.

**18**- Ma tu nizanî ew ên ku li asîmanan û ew ên ku li erdê ne; roj, heyv û stêr, çiya û dar, heywan û gelek ji mirovan jî, ji Xwedê re diçin secdeyê û ji gelekan re jî ezab heq bûye. Xwedê kê reben û bêqîmet bike êdî tu kes tune e ku qedrê wî bigire. Bêguman Xwedê ya ku bivê dike.

**19**- Ev her du civat, (bawermend û kafir) dijraberê hev in, der barê Xwedayê xwe de bi hev ketine. Vêca yên ku kafir bûne ji wan re cilên ji agir hatine dirûtin ku bi ser serên wan de jî, ava kelî dê were rijandin!

**20**- Bi wê (ava kelî) nav û hinavên wan tên helandin û çermên wan (tên biraştin!)

**21**- Gurzên hesinî ji wan re hene (ku firîşteyên zêrevan di dojehê de bi gurzê hesinî li serê wan dixin)!

**22**- Ji ber xem û ezab, her cara ku dixwazin ji dojehê derkevin (bi gurzên hesinî/pola) dîsa li wir têne vegerandin û (ji wan re tê gotin:) De ezabê sotinê tehm bikin!

**23**- Bêguman ew ên ku bawerî anîn û karên qenc kirine Xwedê dê bixe bihiştên ku di binê wan de çem diherikin. Ev tê de bi bazinên zêr û lûlûyan têne xemilandin û cilên wan jî tê de ji hevrîşim e.

وَهُدُٓوا اِلَى الطَّيِّبِ مِنَ الْقَوْلِۚ وَهُدُٓوا اِلٰى صِرَاطِ
الْحَم۪يدِ ﴿٢٤﴾ اِنَّ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا وَيَصُدُّونَ عَنْ سَب۪يلِ اللّٰهِ
وَالْمَسْجِدِ الْحَرَامِ الَّذ۪ي جَعَلْنَاهُ لِلنَّاسِ سَوَٓاءًۨ الْعَاكِفُ
ف۪يهِ وَالْبَادِۜ وَمَنْ يُرِدْ ف۪يهِ بِاِلْحَادٍ بِظُلْمٍ نُذِقْهُ مِنْ
عَذَابٍ اَل۪يمٍ ﴿٢٥﴾ وَاِذْ بَوَّأْنَا لِاِبْرٰه۪يمَ مَكَانَ الْبَيْتِ
اَنْ لَا تُشْرِكْ ب۪ي شَيْـًٔا وَطَهِّرْ بَيْتِيَ لِلطَّٓائِف۪ينَ وَالْقَٓائِم۪ينَ
وَالرُّكَّعِ السُّجُودِ ﴿٢٦﴾ وَاَذِّنْ فِي النَّاسِ بِالْحَجِّ يَأْتُوكَ
رِجَالًا وَعَلٰى كُلِّ ضَامِرٍ يَأْت۪ينَ مِنْ كُلِّ فَجٍّ عَم۪يقٍۙ
﴿٢٧﴾ لِيَشْهَدُوا مَنَافِعَ لَهُمْ وَيَذْكُرُوا اسْمَ اللّٰهِ ف۪ٓي
اَيَّامٍ مَعْلُومَاتٍ عَلٰى مَا رَزَقَهُمْ مِنْ بَه۪يمَةِ الْاَنْعَامِۚ
فَكُلُوا مِنْهَا وَاَطْعِمُوا الْبَٓائِسَ الْفَق۪يرَ ﴿٢٨﴾ ثُمَّ لْيَقْضُوا
تَفَثَهُمْ وَلْيُوفُوا نُذُورَهُمْ وَلْيَطَّوَّفُوا بِالْبَيْتِ الْعَت۪يقِ
﴿٢٩﴾ ذٰلِكَ وَمَنْ يُعَظِّمْ حُرُمَاتِ اللّٰهِ فَهُوَ خَيْرٌ لَهُ عِنْدَ
رَبِّه۪ۜ وَاُحِلَّتْ لَكُمُ الْاَنْعَامُ اِلَّا مَا يُتْلٰى عَلَيْكُمْ
فَاجْتَنِبُوا الرِّجْسَ مِنَ الْاَوْثَانِ وَاجْتَنِبُوا قَوْلَ الزُّورِۙ ﴿٣٠﴾

حُنَفَٓاءَ

**24**- Bi bal gotinên herî xweş ve hatine rasterêkirin û bi bal riya Xwedayê hemîd (pesnande) ve hatine hîdayetkirin.

**25**- Bêguman ew ên kafir bûne, ew ên ku riya Xwedê û Mescîdul Heramê li ber xelkê digirin, ew a ku me ew ji hemû mirovan –yên niştecih û yên ji derve hatin- re wekhev girtiye û kesê di Ke'beyê de bi sitemkarî ji rastiyê averê bibe, em ê ezabekî cansoj bi wî bidin çêjandin.

**26**- Dema ku me cihê Mala Xwedê ji Îbrahîm re diyar kir û (me jê re got:) Ji min re tu tiştî hevpişk negire û mala min ji tewafkeran, nimêjkeran, rikûkeran û secdebiran re paqij bike.

**27**- Di nav mirovan de ji bo çûna heccê gazî bike ku yên peya û yên siwar li ser deveyên weza û westiyayî ji her riyên dûr ve werin cem te (serdana Ke'bê bikin).

**28**- Da ku ji bo xwe (di heccê de) berjewendiyan (ên dinyayî û axretî) bibînin, da ku navê Xwedê li ser şerjêkirina heywanên qurbanê bibêjin, ew ên ku me bi rizqînî daye wan. Vêca ji (goştê) wan bixwin û bidin jar û xizanan jî.

**29**- Paşê bila qirêja xwe ji ser xwe rakin û bila qurbanên ku li ser xwe nezir kiribûn bînin cih û bila wê mala qedîm (Ke'beyê) tewaf bikin.

Mebest ji jêbirina qirêjê ev e ku pora xwe kur bikin, neynokên xwe jêbikin û xwe tam paqij bikin.

**30**- Rewş ev e; kî ku rêz li fermanên Xwedê bigire, ev li cem Xwedayê wî jê re çêtir e. (Di dîn de ew ê ku herambûna wan) ji we re hatiye xwendin, ew ne tê de ye, heywanên din ji we re hatine helalkirin. Nexwe, xwe ji pûtên necis biparêzin û xwe ji şadezoriyê jî biparêzin.

حُنَفَاۤءَ لِلّٰهِ غَيْرَ مُشْرِك۪ينَ بِه۪ۜ وَمَنْ يُشْرِكْ بِاللّٰهِ فَكَاَنَّمَا خَرَّ
مِنَ السَّمَاۤءِ فَتَخْطَفُهُ الطَّيْرُ اَوْ تَهْو۪ي بِهِ الرّ۪يحُ ف۪ي مَكَانٍ
سَح۪يقٍ ﴿٣١﴾ ذٰلِكَ وَمَنْ يُعَظِّمْ شَعَاۤئِرَ اللّٰهِ فَاِنَّهَا مِنْ تَقْوَى
الْقُلُوبِ ﴿٣٢﴾ لَكُمْ ف۪يهَا مَنَافِعُ اِلٰۤى اَجَلٍ مُسَمًّى ثُمَّ مَحِلُّهَاۤ اِلَى
الْبَيْتِ الْعَت۪يقِ ﴿٣٣﴾ وَلِكُلِّ اُمَّةٍ جَعَلْنَا مَنْسَكًا لِيَذْكُرُوا
اسْمَ اللّٰهِ عَلٰى مَا رَزَقَهُمْ مِنْ بَه۪يمَةِ الْاَنْعَامِۜ فَاِلٰهُكُمْ اِلٰهٌ
وَاحِدٌ فَلَهُۤ اَسْلِمُواۜ وَبَشِّرِ الْمُخْبِت۪ينَۙ ﴿٣٤﴾ اَلَّذ۪ينَ اِذَا ذُكِرَ اللّٰهُ
وَجِلَتْ قُلُوبُهُمْ وَالصَّابِر۪ينَ عَلٰى مَاۤ اَصَابَهُمْ وَالْمُق۪يم۪ي
الصَّلٰوةِۙ وَمِمَّا رَزَقْنَاهُمْ يُنْفِقُونَ ﴿٣٥﴾ وَالْبُدْنَ جَعَلْنَاهَا لَكُمْ
مِنْ شَعَاۤئِرِ اللّٰهِ لَكُمْ ف۪يهَا خَيْرٌ فَاذْكُرُوا اسْمَ اللّٰهِ عَلَيْهَا صَوَاۤفَّۚ
فَاِذَا وَجَبَتْ جُنُوبُهَا فَكُلُوا مِنْهَا وَاَطْعِمُوا الْقَانِعَ وَالْمُعْتَرَّۜ
حزب كَذٰلِكَ سَخَّرْنَاهَا لَكُمْ لَعَلَّكُمْ تَشْكُرُونَ ﴿٣٦﴾ لَنْ يَنَالَ اللّٰهَ
لُحُومُهَا وَلَا دِمَاۤؤُ۬هَا وَلٰكِنْ يَنَالُهُ التَّقْوٰى مِنْكُمْۜ كَذٰلِكَ سَخَّرَهَا
لَكُمْ لِتُكَبِّرُوا اللّٰهَ عَلٰى مَا هَدٰيكُمْۜ وَبَشِّرِ الْمُحْسِن۪ينَ ﴿٣٧﴾ اِنَّ اللّٰهَ
يُدَافِعُ عَنِ الَّذ۪ينَ اٰمَنُواۜ اِنَّ اللّٰهَ لَا يُحِبُّ كُلَّ خَوَّانٍ كَفُورٍ ﴿٣٨﴾

**31**- Ji dînên pûç berê xwe vegerînin; berê xwe bidin dînê Xwedê Teala û jê re hevpişkan çênekin. Vêca kî tiştekî ji Xwedê Teala re bike hevpişk, her wekî ew ji esmên ketiye xwarê, vêca teyrek hê li hewa xwe lê bide, yan jî ba wî biavêjê cihekî dûr û kûr.

**32**- Rewş ev e; kî, nîşanên Xwedê Teala mezin bidêre (ji hukim û fermanên wî re rêzdar be) bêguman ew ji teqwadariya dilan e.

**33**- Ji bo we di wan (heywanên qurbanê) de, heyanî demeke navlêkirî (ku dema serjêkirina wan e) hin feyde hene (mîna siwarbûn, şîr û hiriya wan). Piştre cihê qurbankirina wan mala pîroz e (ku ew ê li Ke'beyê bên şerjêkirin).

**34**- Me ji her umetê re qurbangehek daniye da ku li ser şerjêkirina wan terşan (deve, dewar, pezên) ku wek rizq me daye wan navê Xwedê bînin. (Gelî mirovan!) Xwedayê we Xwedayekî yek e, vêca radestî ber fermana wî bibin. Mizgînê bide wan kesên ku ji bo Xwedê xwe dişkînin û dilnizm in!

**35**- Ew ên ku dema (navê) Xwedê Teala tê gotin, dilên wan dilerize û dema belayek bê serê wan xwe radigrin, nimêjê bi awayê pêdivî dikin û ji rizqê me daye wan (di riya xwedê de) xerc dikin.

**36**- Me (qurbankirina) deveyan ji we re kiriye nişanên dînê Xwedê Teala, di wan de ji bo we xêr û bêr hene. Nexwe dema we şerjêkirin, li ser wan (navê) Xwedê Teala bînin û dema ku bi ser kêleka xwe ve ketin (şerjêkirina wan hate cih), êdî (ger hûn bivên) jê bixwin û bi xizanan jî bidin xwarin, ew ên ku hewcedariya xwe dibêjin û yê ku nabêjin jî. Her wisa me ev heywan ji we re berdest kirine da ku hûn spasiya min bikin.

**37**- Ne goştê wan qurbanan ne jî xwîna wan digihîje Xwedê Teala, lê belê bes teqwedariya we digihîje Wî. Her wiha Xwedê ev heywan ji we re sernerm kirine da ku hûn Xwedê mezin bidêrin (hûn bibêjin Ellahuekber Xweda herî mezin e) û mizgînê bide qencîkarên rast û durist!

**38**- Bêguman Xwedê berevaniya yên ku bawerî anîne dike. Bêguman Xwedê ji tu xayîn û nankoran hez nake.

أُذِنَ لِلَّذِينَ يُقَاتَلُونَ بِأَنَّهُمْ ظُلِمُوا وَاِنَّ اللّٰهَ عَلٰى نَصْرِهِمْ
لَقَدِيرٌ ﴿٣٩﴾ اَلَّذِينَ اُخْرِجُوا مِنْ دِيَارِهِمْ بِغَيْرِ حَقٍّ اِلَّا اَنْ يَقُولُوا
رَبُّنَا اللّٰهُ وَلَوْلَا دَفْعُ اللّٰهِ النَّاسَ بَعْضَهُمْ بِبَعْضٍ لَهُدِّمَتْ
صَوَامِعُ وَبِيَعٌ وَصَلَوَاتٌ وَمَسَاجِدُ يُذْكَرُ فِيهَا اسْمُ اللّٰهِ
كَثِيرًا وَلَيَنْصُرَنَّ اللّٰهُ مَنْ يَنْصُرُهُ اِنَّ اللّٰهَ لَقَوِيٌّ عَزِيزٌ
﴿٤٠﴾ اَلَّذِينَ اِنْ مَكَّنَّاهُمْ فِي الْاَرْضِ اَقَامُوا الصَّلٰوةَ وَاٰتَوُا
الزَّكٰوةَ وَاَمَرُوا بِالْمَعْرُوفِ وَنَهَوْا عَنِ الْمُنْكَرِ وَلِلّٰهِ
عَاقِبَةُ الْاُمُورِ ﴿٤١﴾ وَاِنْ يُكَذِّبُوكَ فَقَدْ كَذَّبَتْ قَبْلَهُمْ
قَوْمُ نُوحٍ وَعَادٌ وَثَمُودُ ﴿٤٢﴾ وَقَوْمُ اِبْرٰهِيمَ وَقَوْمُ لُوطٍ
﴿٤٣﴾ وَاَصْحَابُ مَدْيَنَ وَكُذِّبَ مُوسٰى فَاَمْلَيْتُ لِلْكَافِرِينَ
ثُمَّ اَخَذْتُهُمْ فَكَيْفَ كَانَ نَكِيرِ ﴿٤٤﴾ فَكَاَيِّنْ مِنْ قَرْيَةٍ
اَهْلَكْنَاهَا وَهِيَ ظَالِمَةٌ فَهِيَ خَاوِيَةٌ عَلٰى عُرُوشِهَا وَبِئْرٍ
مُعَطَّلَةٍ وَقَصْرٍ مَشِيدٍ ﴿٤٥﴾ اَفَلَمْ يَسِيرُوا فِي الْاَرْضِ فَتَكُونَ
لَهُمْ قُلُوبٌ يَعْقِلُونَ بِهَا اَوْ اٰذَانٌ يَسْمَعُونَ بِهَا فَاِنَّهَا
لَا تَعْمَى الْاَبْصَارُ وَلٰكِنْ تَعْمَى الْقُلُوبُ الَّتِي فِي الصُّدُورِ ﴿٤٦﴾

وَيَسْتَعْجِلُونَكَ

**39-** Ji bo wan (bawermend) ên ku şerê wan tê kirin ji ber zilma ku li wan hatiye kirin destûra wan (bi cengkirinê) hatiye dayîn. Bêguman Xwedê Teala li ser arîkariya wan qadir e.

**40-** Ew ên ku bes ji bo digotin: Xwedayê me Ellah Teala ye", bi neheqî ji malên xwe hatine deranîn. Eger Xwedê hin mirov bi hinekan nedaya alî, miso-ger dê ew keşîşxane, dêr, kenîşt û mizgeftên ku navê Xwedê di wan de pir tê gotin bihatana xerakirin. Kesê ku arîkariya (dînê) Xwedê bike teqez Xweda jî dê arîkariya wî bike. Bêguman Xwedê hêzdar û desthilatdar e.

**41-** Ew ên ku eger em li ser erdê desthilatiyê bidin wan, dê nimêjê bi şeklê pêdivî bikin, zekata malê xwe bidin, fermana bi qenciyê û nehya ji neqenciyê bikin û her ji Xwedê re ye encama kar û kiryaran.

**42-** (Ya Muhemmed!) Eger ew bi te bawerî neyînin, vêca bêguman beriya wan gelê Nûh, Ad û Semûd jî pêxemberên xwe derewker dêrabûn.

**43-** Gelê Îbrahîm û gelê Lût jî (pêxem-berên xwe derewker dêrabûn).

**44-** Gelê Medyenê jî (pêxemberê xwe Şûeyb) derewker dêrand. Mûsa jî wek derewîn hatibû dêrandin. Vêca me muhlet da kafiran, piştre me ew bi ezab girtin, vêca (binêre) neqayiliya min li hemberî wan ka çawa bû?

**45-** Gelek welatên ku xelkê wî zalim bû, me ew ji navê birin. Vêca xaniyên wan bi ser hev de herifîne û bîr(ên avê) bêxwedî ne û koşkên dîwarbilind û xweşik (bêkes mane).

**46-** Ma ew (kafir) qet li ser erdê ne-geriyane (ku bibînin ka me çiqas welat wêran kirine û kavilên wan jî li ber çavan e). Vêca ji wan re dil hebûna ku bi wan têbigihiştina û guh hebûna ku bi wan bibihîstina. Lewra bi rastî ne ku çav kor dibin, lê belê dilê wan ê ku di sîngan de ye, kor e.

Ev ayeta pîroz qewêtiyê li mislimanan dike ku ew li ser erdê bigerin, da ku wan berhemên wêranbûyîn ên ku ji gelên berê mane hûr bikolin. Vêca ji rewşa wan qewmên ku ji ber gunehên xwe ji navê çûne ders û îbretê bi-girin, da ku bi vî awayî ji ezabê Xwedê xwe biparêzin.

وَيَسْتَعْجِلُونَكَ بِالْعَذَابِ وَلَنْ يُخْلِفَ اللّٰهُ وَعْدَهُۜ وَاِنَّ
يَوْمًا عِنْدَ رَبِّكَ كَاَلْفِ سَنَةٍ مِمَّا تَعُدُّونَ ﴿٤٧﴾ وَكَاَيِّنْ مِنْ
قَرْيَةٍ اَمْلَيْتُ لَهَا وَهِيَ ظَالِمَةٌ ثُمَّ اَخَذْتُهَاۚ وَاِلَيَّ الْمَصِيرُ
﴿٤٨﴾ قُلْ يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ اِنَّمَٓا اَنَا لَكُمْ نَذِيرٌ مُبِينٌۚ ﴿٤٩﴾ فَالَّذِينَ
اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ لَهُمْ مَغْفِرَةٌ وَرِزْقٌ كَرِيمٌ
﴿٥٠﴾ وَالَّذِينَ سَعَوْا فِٓي اٰيَاتِنَا مُعَاجِزِينَ اُو۬لٰٓئِكَ اَصْحَابُ
الْجَحِيمِ ﴿٥١﴾ وَمَٓا اَرْسَلْنَا مِنْ قَبْلِكَ مِنْ رَسُولٍ وَلَا نَبِيٍّ
اِلَّٓا اِذَا تَمَنّٰٓى اَلْقَى الشَّيْطَانُ فِٓي اُمْنِيَّتِهِۚ فَيَنْسَخُ اللّٰهُ مَا يُلْقِي
الشَّيْطَانُ ثُمَّ يُحْكِمُ اللّٰهُ اٰيَاتِهِۜ وَاللّٰهُ عَلِيمٌ حَكِيمٌۙ ﴿٥٢﴾
لِيَجْعَلَ مَا يُلْقِي الشَّيْطَانُ فِتْنَةً لِلَّذِينَ فِي قُلُوبِهِمْ مَرَضٌ
وَالْقَاسِيَةِ قُلُوبُهُمْۜ وَاِنَّ الظَّالِمِينَ لَفِي شِقَاقٍ بَعِيدٍۙ ﴿٥٣﴾
وَلِيَعْلَمَ الَّذِينَ اُو۬تُوا الْعِلْمَ اَنَّهُ الْحَقُّ مِنْ رَبِّكَ فَيُؤْمِنُوا بِهِ
فَتُخْبِتَ لَهُ قُلُوبُهُمْۜ وَاِنَّ اللّٰهَ لَهَادِ الَّذِينَ اٰمَنُوا اِلٰى صِرَاطٍ
مُسْتَقِيمٍ ﴿٥٤﴾ وَلَا يَزَالُ الَّذِينَ كَفَرُوا فِي مِرْيَةٍ مِنْهُ حَتّٰى
تَأْتِيَهُمُ السَّاعَةُ بَغْتَةً اَوْ يَأْتِيَهُمْ عَذَابُ يَوْمٍ عَقِيمٍ ﴿٥٥﴾

47- (Ya Muhemmed!) Ew leza hatina ezab ji te dikin. Xwedê hîç ji peymana xwe venagere. Bêguman rojeke li cem Xwedayê te, beranberî hezar salên ku hûn dijimêrin (bêhna Xwedayê te fireh e, leza cezakirinê nake).

Zeman, îzafî ye. Nexasim gava mirov dixwazin zû zeman derbas bibe, ew zû derbas nabe belkî rojek bi qasî sal û zemanan dirêj tê gumankirin. Ev jî nîşan dide ku zeman îzafî ye. Hezar salê ku em dijmêrin li cem Xwedê bi qasî rojekê kin e. Lewra parçeyekî zemên ê ku ji bo Xwedê serê wî û binê wî diyarkirî be tune ye. Li nik Xwedê bêdawîbûn û herûherî heye.

48- Pir welatên ku (xelkê wan) zilm dikirin min muhlet da wan, paşê min ew (bi ezab) helak kirin û veger her bi bal min ve ye.

49- Bibêje: Gelî mirovan! Ez ji bo we tenê hişyarkerekî aşkera me.

50- Herçî ew ên ku bawerî anîn û karên qenc kirine, ji bo wan lêborîn û rizqekî birûmet heye.

51- Herçî ew ên ku der barê (bêtesîrhiştina) ayetên me de wekî ku hev neçar bihêlin bi hev re pêşbaziyê bikin, ha ew xelkê dojehê ne.

52-Me beriya te çiqas resûl û nebiyek şandiye, dema wî xweziyek kiriye şeytên her hewl daye ku tiştekî (ji cem xwe) li xweziya wî zêde bike. Vêca Xwedê ya ku pelîd lê zêde bike, pûç dike. Piştre Xwedê ayetên xwe (di dilê pêxember û mêjiyê wî de) bi saxlemî bi cih dike. Xwedê zana ye, karbinecih e.

53- (Xwedê vê destûrê dide şeytên) da ku ew tiştê ku şeytan zêde dike ji bo wan ên ku di dilên wan de nexweşî(ya nîfaqê) heye û ji bo wan ên ku dilên wan (bi pûtperestiyê) hişk û hola bûye, bike (navgîna) ceribandinê. Bêguman zalim di nav îxtilafeke (ji heq) dûr de ne.

54- Û da ku ew kesên ku zanîn (Quran) ji wan re hatiye dayîn, bizanin ku ev (Quran) heq e û ji cem Xwedayê te hatiye hinartin. Vêca da ku bawerî pê bînin û dilên wan pê aram bibe. Bêguman Xwedê berê wan ên ku bawerî anîne dide bal riya rast û durist ve.

55- Ew kesên ku kafir bûne, her der barê Quranê de di nava şik û gumanê de ne, heyanî ji nişka ve qiyamet bi ser wan de bê yan jî ezabê roja qiyametê bê wan.

اَلْمُلْكُ يَوْمَئِذٍ لِلّٰهِ يَحْكُمُ بَيْنَهُمْ فَالَّذِينَ اٰمَنُوا
وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ فِى جَنَّاتِ النَّعِيمِ ﴿٥٦﴾
وَالَّذِينَ كَفَرُوا وَكَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا فَاُولٰٓئِكَ لَهُمْ
عَذَابٌ مُهِينٌ ﴿٥٧﴾ وَالَّذِينَ هَاجَرُوا فِى سَبِيلِ اللّٰهِ
ثُمَّ قُتِلُٓوا اَوْ مَاتُوا لَيَرْزُقَنَّهُمُ اللّٰهُ رِزْقًا حَسَنًا وَاِنَّ
اللّٰهَ لَهُوَ خَيْرُ الرَّازِقِينَ ﴿٥٨﴾ لَيُدْخِلَنَّهُمْ مُدْخَلًا يَرْضَوْنَهُ
وَاِنَّ اللّٰهَ لَعَلِيمٌ حَلِيمٌ ﴿٥٩﴾ ذٰلِكَ وَمَنْ عَاقَبَ بِمِثْلِ
مَا عُوقِبَ بِهِ ثُمَّ بُغِىَ عَلَيْهِ لَيَنْصُرَنَّهُ اللّٰهُ اِنَّ
اللّٰهَ لَعَفُوٌّ غَفُورٌ ﴿٦٠﴾ ذٰلِكَ بِاَنَّ اللّٰهَ يُولِجُ الَّيْلَ فِى
النَّهَارِ وَيُولِجُ النَّهَارَ فِى الَّيْلِ وَاَنَّ اللّٰهَ سَمِيعٌ بَصِيرٌ
﴿٦١﴾ ذٰلِكَ بِاَنَّ اللّٰهَ هُوَ الْحَقُّ وَاَنَّ مَا يَدْعُونَ مِنْ دُونِهِ
هُوَ الْبَاطِلُ وَاَنَّ اللّٰهَ هُوَ الْعَلِىُّ الْكَبِيرُ ﴿٦٢﴾ اَلَمْ تَرَ
اَنَّ اللّٰهَ اَنْزَلَ مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءً فَتُصْبِحُ الْاَرْضُ
مُخْضَرَّةً اِنَّ اللّٰهَ لَطِيفٌ خَبِيرٌ ﴿٦٣﴾ لَهُ مَا فِى السَّمٰوَاتِ
وَمَا فِى الْاَرْضِ وَاِنَّ اللّٰهَ لَهُوَ الْغَنِىُّ الْحَمِيدُ ﴿٦٤﴾

اَلَمْ

**56**- Wê rojê hukimranî bes a Xwedê Teala ye. Ew di nav wan (bawermend û kafiran) de hukim dide. Herçî ew ên ku wan bawerî aniye û karên qenc kirine ew di nav bihiştên xwedannimet de ne.

**57**- Herçî ew ên ku kafir bûne û bawerî bi ayetên me neanîne, ha ji bo wan ezabekî riswaker û dijwar heye.

**58**- Ew ên ku wan di riya Xwedê Teala de hîcret kiriye, piştre jî hatine kuştin yan jî di koçberiya xwe de mirine, bêguman Xwedê dê (li bihiştê) rizqekî spehî bide wan û bêguman Xwedê her ew e çêtirînê rizqdaran.

**59**- Xwedê Teala dê wan bixe cihekî ku wan memnûn bihêle û bêguman Xwedê her zana ye, bêhnfireh e.

**60**- Rewş ev e; çi kesê ku zilm lê hatibe kirin Xwedê destûr daye ku bi qasî zilma lê hatî kirin tola xwe veke, piştî vê dîsa ku êrîş û zilm lê were kirin, muheqeq Xwedê dê arîkariya wî bike. Bêguman Xwedê bexşende ye, gunehjêbir e.

**61**- Ev rast e. Lewra Xwedê şevê dixe ser rojê (rojê dirêj dike) û rojê jî dixe ser şevê (şevê dirêj dike), bêguman Xwedê bihîzer e, bîner e.

**62**- Ev rast e. Lewra bêguman Ellah Teala her heq ew bi xwe ye û ew ên ku ji bilî Xwedê ew perestina wan dikin, ew tev pûç (û batil) in û bêguman Xwedê Teala ew e yê bilind, yê mezin.

**63**- Ma tu nizanî ku Xwedê Teala ji ewran av daxistiye (û bi wê avê) erd kesk û hêşîn bûye. Bêguman Xwedê Teala hûrbîn e, agahdar e.

**64**- Çi tiştê li erd û asîmanan heye tev yên Xwedê Teala ne û bêguman Xwedê Teala her ew e yê dewlemend, ê babetê spasiyê.

اَلَمْ تَرَ اَنَّ اللّٰهَ سَخَّرَ لَكُمْ مَا فِى الْاَرْضِ وَالْفُلْكَ تَجْرى
فِى الْبَحْرِ بِاَمْرِهٖۜ وَيُمْسِكُ السَّمَٓاءَ اَنْ تَقَعَ عَلَى الْاَرْضِ اِلَّا
بِاِذْنِهٖۜ اِنَّ اللّٰهَ بِالنَّاسِ لَرَؤُ۫فٌ رَح۪يمٌ ﴿٦٥﴾ وَهُوَ الَّذ۪ٓى
اَحْيَاكُمْۘ ثُمَّ يُم۪يتُكُمْ ثُمَّ يُحْي۪يكُمْۜ اِنَّ الْاِنْسَانَ لَكَفُورٌ
﴿٦٦﴾ لِكُلِّ اُمَّةٍ جَعَلْنَا مَنْسَكًا هُمْ نَاسِكُوهُ فَلَا يُنَازِعُنَّكَ
فِى الْاَمْرِ وَادْعُ اِلٰى رَبِّكَۜ اِنَّكَ لَعَلٰى هُدًى مُسْتَق۪يمٍ ﴿٦٧﴾
وَاِنْ جَادَلُوكَ فَقُلِ اللّٰهُ اَعْلَمُ بِمَا تَعْمَلُونَ ﴿٦٨﴾ اَللّٰهُ يَحْكُمُ
بَيْنَكُمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ ف۪يمَا كُنْتُمْ ف۪يهِ تَخْتَلِفُونَ ﴿٦٩﴾ اَلَمْ
تَعْلَمْ اَنَّ اللّٰهَ يَعْلَمُ مَا فِى السَّمَٓاءِ وَالْاَرْضِۜ اِنَّ ذٰلِكَ ف۪ى
كِتَابٍۜ اِنَّ ذٰلِكَ عَلَى اللّٰهِ يَس۪يرٌ ﴿٧٠﴾ وَيَعْبُدُونَ مِنْ دُونِ
اللّٰهِ مَا لَمْ يُنَزِّلْ بِه۪ سُلْطَانًا وَمَا لَيْسَ لَهُمْ بِه۪ عِلْمٌۜ وَمَا
لِلظَّالِم۪ينَ مِنْ نَص۪يرٍ ﴿٧١﴾ وَاِذَا تُتْلٰى عَلَيْهِمْ اٰيَاتُنَا بَيِّنَاتٍ
تَعْرِفُ ف۪ى وُجُوهِ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا الْمُنْكَرَۜ يَكَادُونَ يَسْطُونَ
بِالَّذ۪ينَ يَتْلُونَ عَلَيْهِمْ اٰيَاتِنَاۜ قُلْ اَفَاُنَبِّئُكُمْ بِشَرٍّ مِنْ ذٰلِكُمْۜ
اَلنَّارُۜ وَعَدَهَا اللّٰهُ الَّذ۪ينَ كَفَرُواۜ وَبِئْسَ الْمَص۪يرُ ﴿٧٢﴾

**65**- Erê ma tu nizanî Xwedê Teala tiştê di erdê de heye û ew keştiyên ku li gorî fermana Xwedê di deryayê de diçin ji we re misixur kirine. Xwedê esmên radigire da ku nekeve ser erdê, ji bilî ku ew destûr bide. Bêguman Xwedê Teala ji bo mirovan xwedî şefqet e, dilovîn e.

**66**- Ellah Teala ye, yê ku (ji tuneyî) hûn sax kirine, piştre dê we bimirîne, paşê dîsa dê we sax bike. Bêguman însan pir nankor e!

**67**- Me ji her umetekê re şerîetek (rêbazek) daniye ku ew jî wê bi kar tînin. (Ya Muhemmed!) Naxwe bila der barê vê de tu kes bi te re tênekoşe. Tu jî (mirovan) vexwîne bi bal Xwedayê xwe ve. Bêguman tu di riyeke rast û durist de yî.

**68**- Eger ew (pûtperest, piştî aşkerabûna heqiyê dîsa) bi te re munaqeşeyê bikin (ji wan re) Bibêje: Xwedê Teala, ya ku hûn dikin bêhtir dizane.

**69**- Xwedê Teala roja qiyametê di navbera we de, der barê wan mijarên ku we dijîtiya hev dikir de, dê hukim bide.

**70**- Ma tu jî nizanî ku çi tiştê li erd û asîmanan heye Xwedê Teala wî dizane? Bêguman ev (zanîna Xwedê ya bi tiştê) li cem Xwedê di Lewhul Mehfûzê de nivîsandî ye û ev rewş li ber Xwedê Teala pir hêsan e.

**71**- Ew ji bilî Xwedê îbadeta tiştekî dikin ku Xwedê li serê tu delîl danexistiye û zanîneke wan jî pê nîn e (bes ew li pey şopa bav û kalên xwe diçin) û ji bo zaliman tu arîkar tune ye (ku wan ji dojehê rizgar bike).

**72**- Dema ku ayetên me yên aşkera û ronker ji wan re tên xwendin, tu dê ji rûyên wan nerazîbûnê (ya li hemberî Quranê) bibînî. Hindik dimîne ku ew êrîşî wan bikin, ew ên ku ayetên me ji wan re dixwînin. (Ji wan re) Bibêje: Ma ez ji we re ya ji vê (hêrs û nerazîbûna we) xerabtir bibêjim; (ew jî) agir e! Xwedê, peyman pê daye wan ên ku kafir bûne. Ew, çi pîs wargeh e!

يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ ضُرِبَ مَثَلٌ فَاسْتَمِعُوا لَهُ اِنَّ الَّذٖينَ تَدْعُونَ
مِنْ دُونِ اللّٰهِ لَنْ يَخْلُقُوا ذُبَابًا وَلَوِ اجْتَمَعُوا لَهُ وَاِنْ يَسْلُبْهُمُ
الذُّبَابُ شَيْـًٔا لَا يَسْتَنْقِذُوهُ مِنْهُ ضَعُفَ الطَّالِبُ وَالْمَطْلُوبُ
﴿٧٣﴾ مَا قَدَرُوا اللّٰهَ حَقَّ قَدْرِهٖ اِنَّ اللّٰهَ لَقَوِيٌّ عَزٖيزٌ ﴿٧٤﴾ اَللّٰهُ
يَصْطَفٖي مِنَ الْمَلٰٓئِكَةِ رُسُلًا وَمِنَ النَّاسِ اِنَّ اللّٰهَ سَمٖيعٌ
بَصٖيرٌ ﴿٧٥﴾ يَعْلَمُ مَا بَيْنَ اَيْدٖيهِمْ وَمَا خَلْفَهُمْ وَاِلَى اللّٰهِ تُرْجَعُ
الْاُمُورُ ﴿٧٦﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذٖينَ اٰمَنُوا ارْكَعُوا وَاسْجُدُوا وَاعْبُدُوا
رَبَّكُمْ وَافْعَلُوا الْخَيْرَ لَعَلَّكُمْ تُفْلِحُونَ ﴿٧٧﴾ وَجَاهِدُوا
فِي اللّٰهِ حَقَّ جِهَادِهٖ هُوَ اجْتَبٰيكُمْ وَمَا جَعَلَ عَلَيْكُمْ
فِي الدّٖينِ مِنْ حَرَجٍ مِلَّةَ اَبٖيكُمْ اِبْرٰهٖيمَ هُوَ سَمّٰيكُمُ
الْمُسْلِمٖينَ مِنْ قَبْلُ وَفٖي هٰذَا لِيَكُونَ الرَّسُولُ شَهٖيدًا عَلَيْكُمْ
وَتَكُونُوا شُهَدَٓاءَ عَلَى النَّاسِ فَاَقٖيمُوا الصَّلٰوةَ وَاٰتُوا الزَّكٰوةَ
وَاعْتَصِمُوا بِاللّٰهِ هُوَ مَوْلٰيكُمْ فَنِعْمَ الْمَوْلٰى وَنِعْمَ النَّصٖيرُ ﴿٧٨﴾

سُورَةُ الْمُؤْمِنُونَ مَكِّيَّةٌ وَهِيَ
مِائَةٌ وَثَمَانِي عَشْرَةَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ

**73**- Gelî mirovan! Ji we re derb û meselek hatiye dayîn,vêca rind lê guhdarî bikin; ew (pût) ên ku ji bilî Xwedê hûn perestina wan dikin û li ber wan digerin, eger ew ji bo wê armancê bên cem hev jî, ew nikarin mêşekê jî biafirînin. Eger mêş tiştekî ji (destê) wan birevîne, ew nikarin wî jî jê vegerînin, (êdî çawa di îbadetê de dê ew ji Xwedê re bibin hevpişk?!. Yê ku dixwaze neçar e û yê ku jê tê xwestin jî neçar e!

**74**- (Ji ber vê rewşa xwe) wan bi awayekî babetî Xwedê qedrê Xwedê negirtine. Bêguman Xwedê Teala xwedanhêz e, serkeftî ye.

**75**- Xwedê hem ji firîşteyan hem jî ji mirovan qasid bijartine. Bêguman Xwedê bihîzer e, bîner e.

**76**- Xwedê Teala, bi ya ku wan kirî û ya ku ew dê bikin jî dizane. Hemû kar û bar li Xwedê vedigerin.

**77**- Gelî yên ku we bawerî aniye! Herin rikû'ê, herin sicûdê, îbadeta Xwedayê xwe bikin û qenciyê bikin da ku hûn bi ser bikevin.

**78**- Di ber (dînê) Xwedê de bi rast û duristî cîhadê bikin. Xwedê (ji bo arîkariya dînê xwe) hûn bijartine. Di mijara dîn de wî tu zehmetî li we bar nekiriye. Bidin pey dînê bavê xwe Îbrahîm. Di (kitêbên) berê de û di Quranê de jî Xwedê hûn bi **mislimanî** bi nav kirine. Da ku Pêxember (roja qiyametê) li ser we bibe şahid (ku wî, wehya îlahî ji we re ragihandiye) û hûn jî li ser mirovan bibin şahid (ku pêxemberên wan ji wan re heqî ragihandiye). Nexwe bi awayê pêdivî nimêjê bikin, zekata malê xwe bidin û xwe bi (werîsê saxlem ê) Xwedê bigirin. Ew dost û arîkarê we ye, vêca çi xweş dost e, çi xweş arîkar e!

## SÛREYÊ MUMÎNÛN

Sûreyê Mumînûn, (118) sed û hijdeh ayet e. Li Mekkê daketiye. Vî sûreyî, nexasim ayetên wî yên pêşîn ji ber ku behsa îbadet, exlaq, silûk û nimetan dike ku li axretê ew bawermendên bi van salixan dê bigihîjin wan û li cîhanê jî bigihîjin serkeftinê, jê re Sûreyê Mumînûn hatiye gotin.

Sûreyê Muminûn, 118 (sed û hijdeh) ayet e. Li Mekkê daketiye. Ev sûre, nexasim ayetên wî yên pêşîn ji ber ku behsa îbadet, exlaq, silûk û wan ni'metan dike ku li axîretê ew bawermendên bi van salixan, dê bighîjin wan û li cîhanê jî bighîjin serkeftinê, jê re "Sûreyê El-Muminûn" hatiye gotin. Eynî li ber ronahiya vê yekê Ebdullah kurê Ebbas jî piştî daketina van ayetan ji pêxemberê merhametê hedîseke şerîf rîwayet kiriye ku tê de gotiye: "Deh ayetên wiha ji min re hatine xwarê ku kesê halê wî li gorî wan be, ewê here bihiştê" û her deh ayetên serê vî sûreyî xwendin.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

1- Bêguman bawermend serfiraz bûne û gihîştine miradê xwe.

2- Ew (bawermend)ên ku di nimêja xwe de bitirs in...

3- Ew ên ku berê xwe ji kelevajiyan vedigerînin...

4- Ew ên ku zekata malê xwe didin...

5- Ew ên ku namûsa xwe diparêzin...

6- Ji bilî hevser û cariyên wan, ew bêgazind in...

7- Nexwe kî bixwaze ji vê û wir de here, vêca ew in yên ku tixûbê (helaliyê) derbas kirine.

8- Ew (bawermend)ên ku hay ji emanet û peymanên xwe hene...

9- Ew ên ku li ser kirina nimêjên xwe bi miqate ne...

10- Ha ev in, ew ên mîratgir...

11- Ew ên ku Firdewsê mîrate werdigrin û ew tê de seraqetî dimînin.

الجزء الثامن عشر ٣٤٣

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ

قَدْ اَفْلَحَ الْمُؤْمِنُونَۙ ﴿١﴾ اَلَّذ۪ينَ هُمْ ف۪ي صَلَاتِهِمْ خَاشِعُونَۙ
﴿٢﴾ وَالَّذ۪ينَ هُمْ عَنِ اللَّغْوِ مُعْرِضُونَۙ ﴿٣﴾ وَالَّذ۪ينَ هُمْ
لِلزَّكٰوةِ فَاعِلُونَۙ ﴿٤﴾ وَالَّذ۪ينَ هُمْ لِفُرُوجِهِمْ حَافِظُونَۙ
﴿٥﴾ اِلَّا عَلٰٓى اَزْوَاجِهِمْ اَوْ مَا مَلَكَتْ اَيْمَانُهُمْ فَاِنَّهُمْ غَيْرُ
مَلُوم۪ينَۚ ﴿٦﴾ فَمَنِ ابْتَغٰى وَرَٓاءَ ذٰلِكَ فَاُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الْعَادُونَۚ ﴿٧﴾
وَالَّذ۪ينَ هُمْ لِاَمَانَاتِهِمْ وَعَهْدِهِمْ رَاعُونَۙ ﴿٨﴾ وَالَّذ۪ينَ هُمْ عَلٰى
صَلَوَاتِهِمْ يُحَافِظُونَۢ ﴿٩﴾ اُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الْوَارِثُونَۙ ﴿١٠﴾ اَلَّذ۪ينَ
يَرِثُونَ الْفِرْدَوْسَۜ هُمْ ف۪يهَا خَالِدُونَ ﴿١١﴾ وَلَقَدْ خَلَقْنَا
الْاِنْسَانَ مِنْ سُلَالَةٍ مِنْ ط۪ينٍۚ ﴿١٢﴾ ثُمَّ جَعَلْنَاهُ نُطْفَةً ف۪ي قَرَارٍ
مَك۪ينٍۖ ﴿١٣﴾ ثُمَّ خَلَقْنَا النُّطْفَةَ عَلَقَةً فَخَلَقْنَا الْعَلَقَةَ مُضْغَةً
فَخَلَقْنَا الْمُضْغَةَ عِظَامًا فَكَسَوْنَا الْعِظَامَ لَحْمًاۗ ثُمَّ اَنْشَاْنَاهُ
خَلْقًا اٰخَرَۜ فَتَبَارَكَ اللّٰهُ اَحْسَنُ الْخَالِق۪ينَۜ ﴿١٤﴾ ثُمَّ اِنَّكُمْ
بَعْدَ ذٰلِكَ لَمَيِّتُونَۜ ﴿١٥﴾ ثُمَّ اِنَّكُمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ تُبْعَثُونَ ﴿١٦﴾ وَلَقَدْ
خَلَقْنَا فَوْقَكُمْ سَبْعَ طَرَٓائِقَۗ وَمَا كُنَّا عَنِ الْخَلْقِ غَافِل۪ينَ ﴿١٧﴾

12- Sond be ku me însan ji heriyeke sefandî afirandiye.

13- Paşê me ew kiriye nutfe (xwînpare) û di malzarokê de bi cih kiriye.

14- Paşê me ew nutfe kiriye xwîneke hişk, di pey re me xwîna hişk kiriye piçikek goşt, me ew piçika goşt kiriye hestî (skelêt), me ew hestî bi goşt kiras kiriye, paşê me ew kire afirandiyekî din. Vêca Xwedê pîroz û bilind e ku ew spehîtirînê afirînêran e.

15- Piştî vê qasê bêguman hûn ê bimirin.

16- Piştre, hûn ê roja qiyametê teqez bêne vejandin.

17- Sond be, me di ser we re heft asîman afirandine û em ji wan ne bêhay in.

وَاَنْزَلْنَا مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءً بِقَدَرٍ فَاَسْكَنَّاهُ فِى الْاَرْضِ وَاِنَّا عَلٰى
ذَهَابٍ بِهٖ لَقَادِرُونَ ﴿١٨﴾ فَاَنْشَاْنَا لَكُمْ بِهٖ جَنَّاتٍ مِنْ نَخٖيلٍ
وَاَعْنَابٍ لَكُمْ فٖيهَا فَوَاكِهُ كَثٖيرَةٌ وَمِنْهَا تَاْكُلُونَ ﴿١٩﴾ وَشَجَرَةً
تَخْرُجُ مِنْ طُورِ سَيْنَٓاءَ تَنْبُتُ بِالدُّهْنِ وَصِبْغٍ لِلْاٰكِلٖينَ ﴿٢٠﴾
وَاِنَّ لَكُمْ فِى الْاَنْعَامِ لَعِبْرَةً نُسْقٖيكُمْ مِمَّا فٖى بُطُونِهَا وَلَكُمْ
فٖيهَا مَنَافِعُ كَثٖيرَةٌ وَمِنْهَا تَاْكُلُونَ ﴿٢١﴾ وَعَلَيْهَا وَعَلَى الْفُلْكِ
تُحْمَلُونَ ﴿٢٢﴾ وَلَقَدْ اَرْسَلْنَا نُوحًا اِلٰى قَوْمِهٖ فَقَالَ يَا قَوْمِ اعْبُدُوا
اللّٰهَ مَا لَكُمْ مِنْ اِلٰهٍ غَيْرُهُ اَفَلَا تَتَّقُونَ ﴿٢٣﴾ فَقَالَ الْمَلَؤُا الَّذٖينَ
كَفَرُوا مِنْ قَوْمِهٖ مَا هٰذَٓا اِلَّا بَشَرٌ مِثْلُكُمْ يُرٖيدُ اَنْ يَتَفَضَّلَ
عَلَيْكُمْ وَلَوْ شَٓاءَ اللّٰهُ لَاَنْزَلَ مَلٰٓئِكَةً مَا سَمِعْنَا بِهٰذَا فٖٓى اٰبَٓائِنَا
الْاَوَّلٖينَ ﴿٢٤﴾ اِنْ هُوَ اِلَّا رَجُلٌ بِهٖ جِنَّةٌ فَتَرَبَّصُوا بِهٖ حَتّٰى حٖينٍ
﴿٢٥﴾ قَالَ رَبِّ انْصُرْنٖى بِمَا كَذَّبُونِ ﴿٢٦﴾ فَاَوْحَيْنَٓا اِلَيْهِ اَنِ
اصْنَعِ الْفُلْكَ بِاَعْيُنِنَا وَوَحْيِنَا فَاِذَا جَٓاءَ اَمْرُنَا وَفَارَ التَّنُّورُ
فَاسْلُكْ فٖيهَا مِنْ كُلٍّ زَوْجَيْنِ اثْنَيْنِ وَاَهْلَكَ اِلَّا مَنْ سَبَقَ عَلَيْهِ
الْقَوْلُ مِنْهُمْ وَلَا تُخَاطِبْنٖى فِى الَّذٖينَ ظَلَمُوا اِنَّهُمْ مُغْرَقُونَ ﴿٢٧﴾

فَاِذَا

**18**- Me ji ewran bipîvan (li gorî pêdiviyê) avek daxistiye, vêca me ew di erdê de daye sekinandin û bêguman em li ser birina wê jî kara ne.

**19**- Her wiha bi wê (avê) me ji we re baxçeyên xurme û tirî anîne rastê ku ji we re di wan de gelek mêwe hene û hûn ji wan dixwin.

**20**- Me (bi wê avê) ji we re darek şîn kiriye (ku ew dara zeytûnê ye) ku li Çiyayê Sînayê çêdibe. Berê wê ji bo kesê ku bixwe dibe rûn û pêxwarin.

**21**- Bêguman ji bo we di terşan (deve, dewar û pez) de jî îbret hene, em ji ya di zikê wan de bi we didin vexwarin û ji bo we di wan de hin feydeyên din jî hene, ji bilî vê hûn ji (goştê) wan jî dixwin.

**22**- Hûn li ser wan û li ser keştiyan (bi siwarî) têne hilgirtin.

**23**- Sond be ku Me Nûh (bi pêxemberî) ji gelê wî re şand. Vêca wî (ji wan re) got: Gelê min! Ji Ellah Teala re îbadetê bikin, ji bilî wî ji bo we tu Xweda nîn in. Erê ma hê jî hûn xwe naparêzin?

**24**- Vêca li hemberî vê yekê, ji gelê wî, giregirên ku kafir bûne (wan ji peyrewên xwe re) got: Ew jî, tenê mirovekî eynî wekî we ye (tiştekî wî ji we zêdetir tune ye). Ew dixwaze li ser we xwe qure bike. Eger Xwedê bixwesta (ku pêxemberekî bişîne) muheqeq dê firîşteyek bişanda. Me tiştekî mîna vê ji bav û bapîrên xwe yên pêşî nebihîstiye.

**25**- Ew zilamekî wisa ye ku dînîtiyek pê re heye. Naxwe heya demekê çavdêriya wî bikin.

**26**- Nûh got: Xwedayê min! Bi sedema ku bawerî bi min neanîn arîkariya min bike!

**27**- Me peyam da Nûh ku di bin çavdêriya me de û bi awayê ku me wehî jê re ragihandiye, keştiyê saz bike. Vêca dema fermana me (ya bi helaka wan) hat û av ji tenûrê za û pijiqî, ji her cinsekî heywanan cotekî (yekê nêr û yeka mê) û -ji bilî wan kesên ku fermana me bi helakbirina wan hatîye- malbata xwe jî bixe keştiyê. Der barê wan kesên ku zilim kirine li ber min hîç negere! Bêguman ew teqez dê bêne binavkirin.

فَاِذَا اسْتَوَيْتَ اَنْتَ وَمَنْ مَعَكَ عَلَى الْفُلْكِ فَقُلِ الْحَمْدُ لِلّٰهِ الَّذٖى
نَجّٰينَا مِنَ الْقَوْمِ الظَّالِمٖينَ ﴿٢٨﴾ وَقُلْ رَبِّ اَنْزِلْنٖى مُنْزَلًا مُبَارَكًا
وَاَنْتَ خَيْرُ الْمُنْزِلٖينَ ﴿٢٩﴾ اِنَّ فٖى ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ وَاِنْ كُنَّا لَمُبْتَلٖينَ
﴿٣٠﴾ ثُمَّ اَنْشَاْنَا مِنْ بَعْدِهِمْ قَرْنًا اٰخَرٖينَ ﴿٣١﴾ فَاَرْسَلْنَا فٖيهِمْ رَسُولًا
مِنْهُمْ اَنِ اعْبُدُوا اللّٰهَ مَا لَكُمْ مِنْ اِلٰهٍ غَيْرُهُ اَفَلَا تَتَّقُونَ ﴿٣٢﴾ وَقَالَ
الْمَلَاُ مِنْ قَوْمِهِ الَّذٖينَ كَفَرُوا وَكَذَّبُوا بِلِقَاءِ الْاٰخِرَةِ وَاَتْرَفْنَاهُمْ
فِى الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا مَا هٰذَا اِلَّا بَشَرٌ مِثْلُكُمْ يَاْكُلُ مِمَّا تَاْكُلُونَ مِنْهُ
وَيَشْرَبُ مِمَّا تَشْرَبُونَ ﴿٣٣﴾ وَلَئِنْ اَطَعْتُمْ بَشَرًا مِثْلَكُمْ اِنَّكُمْ
اِذًا لَخَاسِرُونَ ﴿٣٤﴾ اَيَعِدُكُمْ اَنَّكُمْ اِذَا مِتُّمْ وَكُنْتُمْ تُرَابًا وَعِظَامًا
اَنَّكُمْ مُخْرَجُونَ ﴿٣٥﴾ هَيْهَاتَ هَيْهَاتَ لِمَا تُوعَدُونَ ﴿٣٦﴾ اِنْ هِىَ
اِلَّا حَيَاتُنَا الدُّنْيَا نَمُوتُ وَنَحْيَا وَمَا نَحْنُ بِمَبْعُوثٖينَ ﴿٣٧﴾ اِنْ
هُوَ اِلَّا رَجُلٌ افْتَرٰى عَلَى اللّٰهِ كَذِبًا وَمَا نَحْنُ لَهُ بِمُؤْمِنٖينَ ﴿٣٨﴾
قَالَ رَبِّ انْصُرْنٖى بِمَا كَذَّبُونِ ﴿٣٩﴾ قَالَ عَمَّا قَلٖيلٍ لَيُصْبِحُنَّ
نَادِمٖينَ ﴿٤٠﴾ فَاَخَذَتْهُمُ الصَّيْحَةُ بِالْحَقِّ فَجَعَلْنَاهُمْ غُثَاءً فَبُعْدًا
لِلْقَوْمِ الظَّالِمٖينَ ﴿٤١﴾ ثُمَّ اَنْشَاْنَا مِنْ بَعْدِهِمْ قُرُونًا اٰخَرٖينَ ﴿٤٢﴾

**28**- (Ey Nûh!) Dema tu û ew kesên ku ligel te li keştiyê bi cih bibin, wiha bibêje: Hemd ji Xwedê re be ku em ji bereka zaliman reha kirin.

**29**- Dîsa bibêje: Xwedayê min! Min li cihekî pîroz û bi bereket bi cih bike û her Tu yî çêtirînê bicihkiran.

**30**- Bêguman di vê (xelaskirina Nûh û helaka kafiran) de (ji bo we) nîşan (ên hêz û karîna me) hene û bêguman me ew pê ceribandin (ka kî guhdariyê dike û kî nake).

**31**-Paşê li dûv wan Me miletekî din anî holê.

**32**- Vêca me ji nav wan bi xwe pêxemberek ji bo wan şand, (ji wan re got:) Ji Xwedê re îbadetê bikin, ji bilî wî ji bo we tu Xweda nîn in. Erê ma hê jî hûn xwe naparêzin?

**33**- Giregirên gelê wî, ew ên ku kafir bûne, ew ên ku bawerî bi roja axretê neanîn û ewên ku jiyana nimetên ku me dayî wan ew ji rê birin, gotin: Ev jî mirovekî wekî we ye; ji ya ku hûn dixwin dixwe û ji ya ku hûn vedixwin ew jî vedixwe.

**34**- (Giregiran got:) Eger hûn bi gotina mirovekî wekî xwe bikin, muheqeq hûn ê bixesirin.

**35**- Erê ma ew (pêxember) peymanê dide we û dibêje: Dema hûn mirin û bûne ax û hestî, hûn ê careke din (ji gorên xwe) bêne deranîn?

**36**- Ev peymana ku ji we re tê dayîn dûr e, dûr e!

**37**- Ev jiyana me bes jiyana vê dinyayê ye. Em ê bimirin û hinekên din jî dê sax bibin (bêne dinyayê) û piştî mirinê em bi xwe dîsa nayêne vejandin.

**38**- Ev pêxember bes zilamek e, li ser (navê) Xwedê tenê derewê lê tîne (ku dibêje piştî mirinê vejîn heye). Em bi xwe pê nebawer in.

**39**- (Pêxamberê wan) got: Xwedayê min! Bi sedema ku wan bawerî bi min neanî arikariya min bike!

**40**- (Xwedê jê re) Got: Di demeke nêzîk de ew dê (ji ber kufra xwe) poşman bibin!

**41**- Vêca wê qîrîna cansoj bi heqiyê ew girtin (û helak kirin). Îcar me ew kirin wekî qafokên ser avê. Dûrbûna ji rehma Xwedê her ji bereka zalim re be!

**42**- Paşê me li dûv wan hin miletên din anîn holê.

مَا تَسْبِقُ مِنْ اُمَّةٍ اَجَلَهَا وَمَا يَسْتَأْخِرُونَ ﴿٤٣﴾ ثُمَّ اَرْسَلْنَا رُسُلَنَا
تَتْرَا كُلَّمَا جَاءَ اُمَّةً رَسُولُهَا كَذَّبُوهُ فَاَتْبَعْنَا بَعْضَهُمْ بَعْضًا
وَجَعَلْنَاهُمْ اَحَادِيثَ فَبُعْدًا لِقَوْمٍ لَا يُؤْمِنُونَ ﴿٤٤﴾ ثُمَّ اَرْسَلْنَا مُوسٰى
وَاَخَاهُ هٰرُونَ بِاٰيَاتِنَا وَسُلْطَانٍ مُبِينٍ ﴿٤٥﴾ اِلٰى فِرْعَوْنَ وَمَلَائِهٖ
فَاسْتَكْبَرُوا وَكَانُوا قَوْمًا عَالِينَ ﴿٤٦﴾ فَقَالُوا اَنُؤْمِنُ لِبَشَرَيْنِ مِثْلِنَا
وَقَوْمُهُمَا لَنَا عَابِدُونَ ﴿٤٧﴾ فَكَذَّبُوهُمَا فَكَانُوا مِنَ الْمُهْلَكِينَ ﴿٤٨﴾
وَلَقَدْ اٰتَيْنَا مُوسَى الْكِتَابَ لَعَلَّهُمْ يَهْتَدُونَ ﴿٤٩﴾ وَجَعَلْنَا ابْنَ مَرْيَمَ
وَاُمَّهُ اٰيَةً وَاٰوَيْنَاهُمَا اِلٰى رَبْوَةٍ ذَاتِ قَرَارٍ وَمَعِينٍ ﴿٥٠﴾ يَا اَيُّهَا الرُّسُلُ
كُلُوا مِنَ الطَّيِّبَاتِ وَاعْمَلُوا صَالِحًا اِنّ۪ي بِمَا تَعْمَلُونَ عَل۪يمٌ ﴿٥١﴾ وَاِنَّ
هٰذِه۪ اُمَّتُكُمْ اُمَّةً وَاحِدَةً وَاَنَا رَبُّكُمْ فَاتَّقُونِ ﴿٥٢﴾ فَتَقَطَّعُوا اَمْرَهُمْ
بَيْنَهُمْ زُبُرًا كُلُّ حِزْبٍ بِمَا لَدَيْهِمْ فَرِحُونَ ﴿٥٣﴾ فَذَرْهُمْ ف۪ي
غَمْرَتِهِمْ حَتّٰى ح۪ينٍ ﴿٥٤﴾ اَيَحْسَبُونَ اَنَّمَا نُمِدُّهُمْ بِه۪ مِنْ مَالٍ
وَبَن۪ينَ ﴿٥٥﴾ نُسَارِعُ لَهُمْ فِي الْخَيْرَاتِ بَلْ لَا يَشْعُرُونَ ﴿٥٦﴾ اِنَّ
الَّذ۪ينَ هُمْ مِنْ خَشْيَةِ رَبِّهِمْ مُشْفِقُونَ ﴿٥٧﴾ وَالَّذ۪ينَ هُمْ بِاٰيَاتِ
رَبِّهِمْ يُؤْمِنُونَ ﴿٥٨﴾ وَالَّذ۪ينَ هُمْ بِرَبِّهِمْ لَا يُشْرِكُونَ ﴿٥٩﴾

وَالَّذ۪ينَ

**43**- Qet umetek ne dikare ecelê (ezabê) xwe bide pêş ne jî dikare bide paş.

**44**- Paşê me li pey hev pêxemberên xwe şandin. Ji kîjan umetê re pêxemberê wê hatibe, her bawerî pê neanîne. Me jî (di helakê de) ew dane dûv hev û me ew kirine efsane. Vêca dûrbûna ji rehma Xwedê her ji bo wî miletî be ku bawerî nayîne!

**45**- Piştre Me Mûsa û birayê wî Harûn bi mucîzeyên xwe û tevî delîlên aşkera şandin...

**46**- Bi bal Firewn û giregirên wî ve. Vêca wan xwe qure kir (û bawerî neanîn) û ew civateke pozbilind bû.

**47**- Û gotin: Erê ma em ê bi du mirovên wekî xwe bawerî bînin û rewş ev e ku xelkê wan jî ji me re xizmetkar in?

**48**- Vêca wan bawerî bi wan neanî û bûne ji yên helakbûyî.

**49**- Sond be, me Tewrat daye Mûsa da ku ew (îsraîlî pê) rasterê bibin.

**50**- Me kurê Meryemê (Îsa) û dayîka wî jî kirine nîşanek (li ser qudreta xwe) û me ew li cihekî bilind, ku xwedan dar û kanî ye, niştecih kirin.

**51**- Gelî pêxemberan! Ji xwarinên pak û helal bixwin û karên qenc bikin. Bêguman ez bi ya ku hûn dikin dizanim.

**52**- Ev dînê we tevan yek dîn e, Ez jî Xwedayê we me, vêca (bi pêkanîna fermanên min û bi dûrbûna ji qedexeyan) xwe ji min biparêzin.

**53**- Êdî ew (umetên pêxemberan) di karê dînê xwe de parçe parçe bûne. Her civat bi ya li cem xwe dilxweş in.

Her civat, her umeta pêxemberekî bi dîn û ilmê xwe kêfxweş dibe û guman dike ku ew li ser heqiyê ye û dîgerên wê jî li ser batilin. Ya rast ev e; ya li ser heqiyê ya ku baweriyê bi hemû pêxemberan bîne, rêz û hurmeta wan bigire û li pey rêç û şopa pêxemberê axirzeman here.

**54**- Vêca tu heyanî demekê wan di nav rêşaşiya wan de bihêle!

**55**- Ma ji wan we ye ku bi wî mal û zarokên ku em didin wan...

**56**- Em ji wan re lezê li xêran dikin? Na, belkî ew tênagihîjin.

**57**- Bêguman ên ku ji tirsa Xwedayê xwe bisaw û bitirs in...

**58**- Ew ên ku bawerî bi ayetên Xwedayê xwe tînin...

**59**- Ew ên ku ji Xwedayê xwe re tiştekî nakin hevpişk...

وَالَّذٖينَ يُؤْتُونَ مَٓا اٰتَوْا وَقُلُوبُهُمْ وَجِلَةٌ اَنَّهُمْ اِلٰى رَبِّهِمْ رَاجِعُونَ
٦٠ اُولٰٓئِكَ يُسَارِعُونَ فِى الْخَيْرَاتِ وَهُمْ لَهَا سَابِقُونَ ٦١ وَلَا
نُكَلِّفُ نَفْسًا اِلَّا وُسْعَهَا وَلَدَيْنَا كِتَابٌ يَنْطِقُ بِالْحَقِّ وَهُمْ
لَا يُظْلَمُونَ ٦٢ بَلْ قُلُوبُهُمْ فٖى غَمْرَةٍ مِنْ هٰذَا وَلَهُمْ اَعْمَالٌ مِنْ
دُونِ ذٰلِكَ هُمْ لَهَا عَامِلُونَ ٦٣ حَتّٰٓى اِذَٓا اَخَذْنَا مُتْرَفٖيهِمْ بِالْعَذَابِ
اِذَا هُمْ يَجْـَٔرُونَ ٦٤ لَا تَجْـَٔرُوا الْيَوْمَ اِنَّكُمْ مِنَّا لَا تُنْصَرُونَ
٦٥ قَدْ كَانَتْ اٰيَاتٖى تُتْلٰى عَلَيْكُمْ فَكُنْتُمْ عَلٰٓى اَعْقَابِكُمْ تَنْكِصُونَ
٦٦ مُسْتَكْبِرٖينَ بِهٖ سَامِرًا تَهْجُرُونَ ٦٧ اَفَلَمْ يَدَّبَّرُوا الْقَوْلَ
اَمْ جَٓاءَهُمْ مَا لَمْ يَأْتِ اٰبَٓاءَهُمُ الْاَوَّلٖينَ ٦٨ اَمْ لَمْ يَعْرِفُوا رَسُولَهُمْ
فَهُمْ لَهُ مُنْكِرُونَ ٦٩ اَمْ يَقُولُونَ بِهٖ جِنَّةٌ بَلْ جَٓاءَهُمْ بِالْحَقِّ
وَاَكْثَرُهُمْ لِلْحَقِّ كَارِهُونَ ٧٠ وَلَوِ اتَّبَعَ الْحَقُّ اَهْوَٓاءَهُمْ
لَفَسَدَتِ السَّمٰوَاتُ وَالْاَرْضُ وَمَنْ فٖيهِنَّ بَلْ اَتَيْنَاهُمْ بِذِكْرِهِمْ
فَهُمْ عَنْ ذِكْرِهِمْ مُعْرِضُونَ ٧١ اَمْ تَسْـَٔلُهُمْ خَرْجًا فَخَرَاجُ رَبِّكَ خَيْرٌ
وَهُوَ خَيْرُ الرَّازِقٖينَ ٧٢ وَاِنَّكَ لَتَدْعُوهُمْ اِلٰى صِرَاطٍ مُسْتَقٖيمٍ
٧٣ وَاِنَّ الَّذٖينَ لَا يُؤْمِنُونَ بِالْاٰخِرَةِ عَنِ الصِّرَاطِ لَنَاكِبُونَ ٧٤

**60**- Ew ên ku ji malê Xwedê daye wan sedeqeyan didin (û ji tirsa ku yê ji wan qebûl nebe) dilên wan dilerize. Bêguman ew ê li Xwedayê xwe vegerin.

**61**- Ha ev ên hanê, li xêr û qenciyan dibezin û berî xelkê xwe diavêjine xêrê.

**62**- Em tu kesî zêdeyî qeweta wî berpirs nagirin. Li bal me kitêbek (a kar û kiryaran) heye ku rastiyê dibêje û hîç neheqî dê li wan neyê kirin.

**63**- Nexêr, der barê vê Qur'anê de dilên wan (kafiran) di korîtî û nezanînê de ye û ji bilî vê (pûtperestiyê) jî hin karên wan ên xerab hene ku ew dikin.

**64**- Paşê dema em dewlemend û serekên wan bi ezab bigirin tu dê bibînî ku ew dikin feryad û fîxan!

**65**- (Ji wan re tê gotin:) Îro, beyhûde nekin hawar! Bêguman hûn ê ji me arîkariyê nebînin!

**66**- Bêguman ayetên min (ên Qur'anê) ji we re dihatin xwendin, hûn bi ser pehniya xwe ve vedigeriyan.

**67**- We, xwe bi wê (Ke'beyê) qure dikir, di şevbihêrkê xwe de dev diavête Qur'anê, di heqê wê de hûn pîs diaxivîn.

**68**- Erê ma ew li vê Qur'anê hîç nefikirîne? Yan jî, ya ku berê ji bav û bapîrên wan re nehatibû, ji wan re hatiye?

**69**- Yan jî ma hê wan pêxemberê xwe nas nekiriye, ji bo vê yekê wî înkar dikin?

**70**- Yan jî ew dibêjin: Bi Muhemmed re dînîtiyek heye? Nexêr, ne wisan e, belkî wî heqî ji wan re aniye. Hal ev e ku ew ji heqiyê hez nakin.

**71**- Eger heqî bidaya pey hewesên wan, muheqeq (pergala erd û asîmanan û yên ku di wan de hene dê xera bibûya. Na belkî me ji wan re (ev Qurana ku) serbilindiya wan e daye wan, lê belê wan berê xwe ji serbilindiya xwe guhartiye.

**72**- Yan jî ma tu xeracekê ji wan dixwazî (vêca ew nayêne îmanê)? Êdî dana Xwedayê te (ji ya ku ew bidin) çêtir e û her ew e çêtirînê riziqdaran.

**73**- Rastî ev e ku tu wan vedixwînî riyeke rast û durist (ku dînê îslamê ye).

**74**- Bêguman ên ku bawerî bi axretê nayînin ew ji ser riya heq û rast ketine.

وَلَوْ رَحِمْنَاهُمْ وَكَشَفْنَا مَا بِهِمْ مِنْ ضُرٍّ لَلَجُّوا فِى طُغْيَانِهِمْ
يَعْمَهُونَ ﴿٧٥﴾ وَلَقَدْ اَخَذْنَاهُمْ بِالْعَذَابِ فَمَا اسْتَكَانُوا لِرَبِّهِمْ
وَمَا يَتَضَرَّعُونَ ﴿٧٦﴾ حَتّٰى اِذَا فَتَحْنَا عَلَيْهِمْ بَابًا ذَا عَذَابٍ
شَدِيدٍ اِذَا هُمْ فِيهِ مُبْلِسُونَ ﴿٧٧﴾ وَهُوَ الَّذٖى اَنْشَاَ لَكُمُ
السَّمْعَ وَالْاَبْصَارَ وَالْاَفْـِٔدَةَ قَلِيلًا مَا تَشْكُرُونَ ﴿٧٨﴾ وَهُوَ الَّذٖى
ذَرَاَكُمْ فِى الْاَرْضِ وَاِلَيْهِ تُحْشَرُونَ ﴿٧٩﴾ وَهُوَ الَّذٖى يُحْيٖى
وَيُمِيتُ وَلَهُ اخْتِلَافُ الَّيْلِ وَالنَّهَارِ اَفَلَا تَعْقِلُونَ ﴿٨٠﴾ بَلْ قَالُوا
مِثْلَ مَا قَالَ الْاَوَّلُونَ ﴿٨١﴾ قَالُوا ءَاِذَا مِتْنَا وَكُنَّا تُرَابًا وَعِظَامًا
ءَاِنَّا لَمَبْعُوثُونَ ﴿٨٢﴾ لَقَدْ وُعِدْنَا نَحْنُ وَاٰبَاؤُنَا هٰذَا مِنْ
قَبْلُ اِنْ هٰذَا اِلَّا اَسَاطِيرُ الْاَوَّلِينَ ﴿٨٣﴾ قُلْ لِمَنِ الْاَرْضُ
وَمَنْ فِيهَا اِنْ كُنْتُمْ تَعْلَمُونَ ﴿٨٤﴾ سَيَقُولُونَ لِلّٰهِ قُلْ اَفَلَا
تَذَكَّرُونَ ﴿٨٥﴾ قُلْ مَنْ رَبُّ السَّمٰوَاتِ السَّبْعِ وَرَبُّ الْعَرْشِ
الْعَظِيمِ ﴿٨٦﴾ سَيَقُولُونَ لِلّٰهِ قُلْ اَفَلَا تَتَّقُونَ ﴿٨٧﴾ قُلْ مَنْ بِيَدِهٖ
مَلَكُوتُ كُلِّ شَيْءٍ وَهُوَ يُجِيرُ وَلَا يُجَارُ عَلَيْهِ اِنْ
كُنْتُمْ تَعْلَمُونَ ﴿٨٨﴾ سَيَقُولُونَ لِلّٰهِ قُلْ فَاَنّٰى تُسْحَرُونَ ﴿٨٩﴾

بَلْ

**75**- Eger em li wan bihatina rehmê û tengasiya ku gihatî wan me ji ser wan rakira, dîsa dê di rêşaşiya xwe de biketina rikê û sergêjane bigeviziyana.

**76**- Sond be me ew bi ezabê (birçîbûnê) girtin, dîsa jî wan xwe ji Rebê xwe re nizm nekir û bi zarezar li ber wî negeriyan.

**77**- Heyanî dema em deriyê ezabekî dijwar li ser wan vekin, tu dê binêrî ku va ye wan li wir hêviya xwe winda kiriye, şaş mane!

**78**- Ellah Teala ye, yê ku ji bo we guh, çav û dil afirandine. Hûn çi qas hindik spasî(ya wan nimetan) dikin!

**79**- Ellah Teala ye, yê hûn li sererdê afirandine. Hûn ê li ber wî bêne civandin.

**80**- Ellah Teala ye, yê ku sax dike û dimirîne, guherîna şev û rojê jî karê wî ye. Ma hê jî hûn aqilê xwe bi kar nayînin!

**81**- Digel vê jî wan wekî gotina pêşiyên xwe got.

**82**- Gotin: Naxwe rast e ku dema em bimirin bibin ax û hestî em ê dîsa bêne saxkirin?

**83**- Sond be eynî ev peyman hê berê ji me û bavên me re hatibû dayîn, (lê belê) ev ji çîrok-çîvanokên pêşiyan pê ve, ne tiştekî din e?

**84**- Bibêje: Eger bi rastî hûn dizanin (de ka bibêjin:) Ev cîhan û yên ku tê de hene, yên kê ne?

**85**- Dê bibêjin: Yên Ellah Teala ne. Bibêje: Ku welê ye, erê ma hûn aqil nagirin?!

**86**- (Ji wan bipirse) Bibêje: Ma Xwedayê asîmanên heft tebeq û Xwedayê Erşê mezin kî ye?

**87**- Dê bibêjin: Yên Ellah Teala ne. Bibêje: Erê ma vêca hûn jê natirsin?

**88**- (Ji wan re) Bibêje: Eger bi rastî hûn dizanin (de ka bibêjin:) Ma kî ye, ew ê ku mulkiyet û gera her tiştî di destê wî de, ew ê ku her tiştî diparêze û ew ne hewceyî parastinê ye?

**89**- Dê bibêjin: (Ev hemû) yên Ellah Teala ne. Bibêje: Nexwe çawa hûn tên xapandin (û berê xwe ji îbadeta Heq Teala vedigerînin)?

بَلْ اَتَيْنَاهُمْ بِالْحَقِّ وَاِنَّهُمْ لَكَاذِبُونَ ﴿٩٠﴾ مَا اتَّخَذَ اللّٰهُ مِنْ
وَلَدٍ وَمَا كَانَ مَعَهُ مِنْ اِلٰهٍ اِذًا لَذَهَبَ كُلُّ اِلٰهٍ بِمَا خَلَقَ
وَلَعَلَا بَعْضُهُمْ عَلٰى بَعْضٍ سُبْحَانَ اللّٰهِ عَمَّا يَصِفُونَ ﴿٩١﴾ عَالِمِ
الْغَيْبِ وَالشَّهَادَةِ فَتَعَالٰى عَمَّا يُشْرِكُونَ ﴿٩٢﴾ قُلْ رَبِّ اِمَّا
تُرِيَنّ۪ي مَا يُوعَدُونَ ﴿٩٣﴾ رَبِّ فَلَا تَجْعَلْن۪ي فِي الْقَوْمِ الظَّالِم۪ينَ
﴿٩٤﴾ وَاِنَّا عَلٰٓى اَنْ نُرِيَكَ مَا نَعِدُهُمْ لَقَادِرُونَ ﴿٩٥﴾ اِدْفَعْ بِالَّت۪ي
هِيَ اَحْسَنُ السَّيِّئَةَ نَحْنُ اَعْلَمُ بِمَا يَصِفُونَ ﴿٩٦﴾ وَقُلْ رَبِّ
اَعُوذُ بِكَ مِنْ هَمَزَاتِ الشَّيَاط۪ينِ ﴿٩٧﴾ وَاَعُوذُ بِكَ رَبِّ اَنْ
يَحْضُرُونِ ﴿٩٨﴾ حَتّٰٓى اِذَا جَٓاءَ اَحَدَهُمُ الْمَوْتُ قَالَ رَبِّ
ارْجِعُونِ ﴿٩٩﴾ لَعَلّ۪ٓي اَعْمَلُ صَالِحًا ف۪يمَا تَرَكْتُ كَلَّا اِنَّهَا
كَلِمَةٌ هُوَ قَٓائِلُهَا وَمِنْ وَرَٓائِهِمْ بَرْزَخٌ اِلٰى يَوْمِ يُبْعَثُونَ ﴿١٠٠﴾
فَاِذَا نُفِخَ فِي الصُّورِ فَلَٓا اَنْسَابَ بَيْنَهُمْ يَوْمَئِذٍ وَلَا يَتَسَٓاءَلُونَ
﴿١٠١﴾ فَمَنْ ثَقُلَتْ مَوَاز۪ينُهُ فَاُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الْمُفْلِحُونَ ﴿١٠٢﴾ وَمَنْ
خَفَّتْ مَوَاز۪ينُهُ فَاُو۬لٰٓئِكَ الَّذ۪ينَ خَسِرُٓوا اَنْفُسَهُمْ ف۪ي جَهَنَّمَ
خَالِدُونَ ﴿١٠٣﴾ تَلْفَحُ وُجُوهَهُمُ النَّارُ وَهُمْ ف۪يهَا كَالِحُونَ ﴿١٠٤﴾

**90**- Nexêr ne wisan e, bêguman me heq ji wan re aniye û bêguman ew derewkar in.

**91**- Ellah Teala (ji bo xwe) çu zarok negirtine û digel wî tu xweda jî tun in. Eger wisa bûya dê her Xwedayek bi mexluqê xwe ve bûya (dê ew îdare bikira û nehişta xwedayên din musselletî ser wî bibin) û dê hinan ji wan zora yê din bibira. Ellah Teala ji ya ku ew wî diwesifînin, pak û bilind e.

**92**-Xwedê Teala, zanayê nehênî û aşkerayan e, vêca ji ya ku jê re dikin şirîk ew pir bilind e.

**93**- Bibêje: Xwedayê min! Eger te hukim dabe ku hêj ez sax bim tu wan bidî ezabê.

**94**- Xwedayê min! Min mexe nav civata zaliman.

**95**- Bêguman Em dikarin hinekî ji wî ezabê ku me peyman pê daye nîşanî te bidin.

**96**- (Ya Muhemmed!) Tu nebaşiyê bi ya herî spehî bide alî, Em bi ya ku ew der heqê te de dibêjin, bêhtir dizanin.

**97**- Bibêje: Xwedayê min! Ez xwe bi te ji tasewasên şeytanan diparêzim!

**98**- Xwedayê min! Ez xwe bi te diparêzim ku ew digel min bin.

**99**- Paşê dema mirina yekî ji wan (kafiran) hat, dibêje: Xwedayê min! Ji kerema xwe min vegerîne (dinyayê da ku ez te bihebînim).

**100**- Da ku ez beranberî wî umrê xwe yê ku min bêfeyde bihurandiye karê qenciyê bikim. Na, (ev ne mimkun e)! Ev gotina ku wî gotiye, gotineke bêfeyde ye. Heyanî roja ku dîsa bêne saxkirin li pêşiya wan berzexek (astengek) heye (ku nahêle ew li cîhanê bêne vegerandin).

**101**- Dema di sûrê de were pifkirin, êdî wê rojê di nav wan de ne neseb feydê dide ne jî li hev dipirsin.

**102**- Êdî kêşana kê (ya kar û kiryarên qenc) giran were, ha ew bi ser ketine.

**103**- Kêşana kê jî sivik were, êdî wan jî bi xwe zerar kiriye, (lewra ew) dê her û her li dojehê bimînin.

**104**- Li dojehê agir rûyên wan dişewitîne, lêvên wan diqurmiçin û diranên wan qîç dibin.



**105**- (Ji wan re tê gotin:) Qey ayetên min ji we re nedihatin xwendin, vêca we jî ew înkar dikirin?

**106**- Ew dê bibêjin: Xwedayê me! Xerabiya me serî ji me stand û em civateke jirêketî bûn.

**107**- Xwedayê me! Me ji vir derîne. Eger careke din em (li kirinên xwe yên xerab) vegerin, êdî xuya ye ku em zalim in.

**108**- (Xwedê ji wan re) Dibêje: Li wir rezîl û riswa bimînin, hiş bin. Êdî bi min re nepeyivin!

**109**- Bêguman rewş ev e, ji bendeyên min civatekê digot: Xwedayê me! Me îman aniye, li gunehên me bibihure û li me were rehmê. Bêguman her tu yî çêtirînê dilovanan.

**110**- Vêca we ew ji xwe re kirin mijûlahî heyanî ku ew tinazên we zikrê min ji bîra we bir û hûn her bi wan bi tinazkerî dikeniyan.

**111**- Îro Min beranberê wê sebra ku kêşabûn xelat daye wan, ku bêguman her ew in ên xelasbûyî.

**112**- (Xwedê Teala) dibêje: Hûn çend salan li ser rûyê erdê jiyane?

**113**- Dibêjin: Em rojekê yan jî bi qasî danekî rojê jiyane, vêca de ka ji hesabgiran bipirse.

**114**-(Xwedê Teala) dibêje: Eger hûn dizanin ku jiyana hûn bi balê ve diçin çiqas dirêj e, hûn dizanin ku hûn li dinyayê hindik jiyan e.

**115**- (Gelî mirovan!) Erê ma hûn guman dikin ku me hûn beredayî afirandine û hûn gumandar in ku hûn ê li me neyêne vegerandin?

**116**-Vêca ew Xwedayê hukimran ê desthilatedar ê heq ji gotinên muşrikan pak û bilind e, ji wî pê ve tu xweda nîn in, Ew xwedîyê 'Erşê pîroz e.

**117**- Çi kesê ku digel Ellah Teala îbadeta xwedayekî din bike, ku tu delîleke wî li serê tune ye, vêca cezayê wî li cem Xwedayê wî ye. Bêguman rewş ev e; mirovên kafir bi ser nakevin.

**118**- Bibêje: Xwedayê min! Li min bibihure, li min rehmê bike, teqez tu yî çêtirînê dilovanan.

## SÛREYÊ NÛR

Sûreyê Nûr, 64 (şêst û çar) ayet e. Li Medînê daketiye. Ji ber ku di ayeta 35an de hatiye gotin: "Ellah nûra asîmanan û erdê ye" ku nûr jî bi maneya ronahî ye, ji vî sûreyî re Nûr hatiye gotin.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

1- Ev sûreyek e ku me ew hinartiye û me (hukmên ku tê de ne li ser we) ferz kirine. Me ayetên aşkera (û mebestdiyar) tê de anîne da ku hûn bifikirin, jê şîretê bigirin.

2- Jin û mêrê zinaker (ên nezewicî) her yekî ji wan sed darî li wan bidin û eger hûn ji Xwedê û roja axîretê bawerdar in, di mijara (tetbîqa hukmên) dînê Xwedê de, bila di biwara wan de hestê merhemeta we (ji tetbîqa cezayî) negire! Bila ji bawermendan civatek hazir, cezayê wan bibe (û cezadanê bibîne).

3- Zilamê zinaker dikare tenê bi jineke zinaker re yan jî bi jineke muşrik re bizewice. Jina zinaker jî tenê mêrekî zinaker re yan jî mêrekî pûtperest dikare wê mehr bike. Ev (zewaca bi zinakeran re) li ser (mêr û jin)ên bawermend hatiye heramkirin.

4- Ew kesên ku zinayê biavêjin stûyê jinên binamûs, piştre (ji bo îsbata vê jî) çar şahidan neyînin, vêca her yekî ji wan heştê darî li wan bidin û îcar tu car şahidiya wan qebûl nekin. Ha ew jirêderketî bi xwe ne.

5- Lê belê ew kesên ku piştî vê tobe bikin (hal û hereketên xwe) rast bikin, ew cuda ne. Bêguman Xwedê Teala, gunehjêbir e, dilovîn e.

6- Ew kesên ku zinayê biavêjin stûyê

٣٥١ اَلْجُزْءُ الثَّامِنَ عَشَرَ

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
سُورَةٌ اَنْزَلْنَاهَا وَفَرَضْنَاهَا وَاَنْزَلْنَا ف۪يهَٓا اٰيَاتٍ بَيِّنَاتٍ لَعَلَّكُمْ
تَذَكَّرُونَ ﴿١﴾ اَلزَّانِيَةُ وَالزَّان۪ي فَاجْلِدُوا كُلَّ وَاحِدٍ مِنْهُمَا مِائَةَ جَلْدَةٍ
وَلَا تَأْخُذْكُمْ بِهِمَا رَأْفَةٌ ف۪ي د۪ينِ اللّٰهِ اِنْ كُنْتُمْ تُؤْمِنُونَ بِاللّٰهِ وَالْيَوْمِ
الْاٰخِرِۚ وَلْيَشْهَدْ عَذَابَهُمَا طَٓائِفَةٌ مِنَ الْمُؤْمِن۪ينَ ﴿٢﴾ اَلزَّان۪ي لَا يَنْكِحُ اِلَّا
زَانِيَةً اَوْ مُشْرِكَةًۘ وَالزَّانِيَةُ لَا يَنْكِحُهَٓا اِلَّا زَانٍ اَوْ مُشْرِكٌۚ وَحُرِّمَ ذٰلِكَ
عَلَى الْمُؤْمِن۪ينَ ﴿٣﴾ وَالَّذ۪ينَ يَرْمُونَ الْمُحْصَنَاتِ ثُمَّ لَمْ يَأْتُوا بِاَرْبَعَةِ
شُهَدَٓاءَ فَاجْلِدُوهُمْ ثَمَان۪ينَ جَلْدَةً وَلَا تَقْبَلُوا لَهُمْ شَهَادَةً اَبَدًاۚ وَاُو۬لٰٓئِكَ
هُمُ الْفَاسِقُونَۙ ﴿٤﴾ اِلَّا الَّذ۪ينَ تَابُوا مِنْ بَعْدِ ذٰلِكَ وَاَصْلَحُواۚ فَاِنَّ اللّٰهَ
غَفُورٌ رَح۪يمٌ ﴿٥﴾ وَالَّذ۪ينَ يَرْمُونَ اَزْوَاجَهُمْ وَلَمْ يَكُنْ لَهُمْ شُهَدَٓاءُ اِلَّٓا
اَنْفُسُهُمْ فَشَهَادَةُ اَحَدِهِمْ اَرْبَعُ شَهَادَاتٍ بِاللّٰهِۙ اِنَّهُ لَمِنَ الصَّادِق۪ينَ ﴿٦﴾
وَالْخَامِسَةُ اَنَّ لَعْنَتَ اللّٰهِ عَلَيْهِ اِنْ كَانَ مِنَ الْكَاذِب۪ينَ ﴿٧﴾ وَيَدْرَؤُا
عَنْهَا الْعَذَابَ اَنْ تَشْهَدَ اَرْبَعَ شَهَادَاتٍ بِاللّٰهِۙ اِنَّهُ لَمِنَ الْكَاذِب۪ينَۙ
﴿٨﴾ وَالْخَامِسَةَ اَنَّ غَضَبَ اللّٰهِ عَلَيْهَٓا اِنْ كَانَ مِنَ الصَّادِق۪ينَ ﴿٩﴾
وَلَوْلَا فَضْلُ اللّٰهِ عَلَيْكُمْ وَرَحْمَتُهُ وَاَنَّ اللّٰهَ تَوَّابٌ حَك۪يمٌ ﴿١٠﴾

jinên xwe û ji bilî wan tu şahidên wan jî tune be, şahidiya her yekî ji wan ev e ku bi (navê) Ellah Teala çar caran sond bixwe ku ew ji rastbêjan e.

7- Di cara pêncem de jî, (ew dê bibêje:) Laneta Xwedê li wî (mêrî) be, eger ew ji derewbêjan be.

8- Cezayê zinayê li dinyayê ji ser tê avêtin ku jin jî, çar caran bi (navê) Ellah Teala sond bixwe û şahdeyî bide ku ew (mêrê wê) ji derewbêjan e.

9- Cara pêncem jî (dê bibêje:) Xezeba Xwedê Teala li wê (jinê) bibare, eger ew (mêrê wê) ji rastbêjan be.

10- Eger qencî û dilovaniya Xwedê Teala li ser we nebûya (hûn ê şermezar û helak bûna) û bêguman Xwedê Teala tobepejrên e, xwedanhîkmet e.

إِنَّ الَّذِينَ جَاؤُ بِالْإِفْكِ عُصْبَةٌ مِنْكُمْ لَا تَحْسَبُوهُ شَرًّا لَكُمْ بَلْ
هُوَ خَيْرٌ لَكُمْ لِكُلِّ امْرِئٍ مِنْهُمْ مَا اكْتَسَبَ مِنَ الْإِثْمِ وَالَّذِي
تَوَلّٰى كِبْرَهُ مِنْهُمْ لَهُ عَذَابٌ عَظِيمٌ ﴿١١﴾ لَوْلَا إِذْ سَمِعْتُمُوهُ
ظَنَّ الْمُؤْمِنُونَ وَالْمُؤْمِنَاتُ بِأَنْفُسِهِمْ خَيْرًا وَقَالُوا هٰذَا إِفْكٌ مُبِينٌ
﴿١٢﴾ لَوْلَا جَاؤُ عَلَيْهِ بِأَرْبَعَةِ شُهَدَاءَ فَإِذْ لَمْ يَأْتُوا بِالشُّهَدَاءِ فَأُولٰئِكَ
عِنْدَ اللّٰهِ هُمُ الْكَاذِبُونَ ﴿١٣﴾ وَلَوْلَا فَضْلُ اللّٰهِ عَلَيْكُمْ وَرَحْمَتُهُ فِي
الدُّنْيَا وَالْآخِرَةِ لَمَسَّكُمْ فِي مَا أَفَضْتُمْ فِيهِ عَذَابٌ عَظِيمٌ ﴿١٤﴾ إِذْ
تَلَقَّوْنَهُ بِأَلْسِنَتِكُمْ وَتَقُولُونَ بِأَفْوَاهِكُمْ مَا لَيْسَ لَكُمْ بِهِ عِلْمٌ
وَتَحْسَبُونَهُ هَيِّنًا وَهُوَ عِنْدَ اللّٰهِ عَظِيمٌ ﴿١٥﴾ وَلَوْلَا إِذْ سَمِعْتُمُوهُ
قُلْتُمْ مَا يَكُونُ لَنَا أَنْ نَتَكَلَّمَ بِهٰذَا سُبْحَانَكَ هٰذَا بُهْتَانٌ عَظِيمٌ
﴿١٦﴾ يَعِظُكُمُ اللّٰهُ أَنْ تَعُودُوا لِمِثْلِهِ أَبَدًا إِنْ كُنْتُمْ مُؤْمِنِينَ ﴿١٧﴾
وَيُبَيِّنُ اللّٰهُ لَكُمُ الْآيَاتِ وَاللّٰهُ عَلِيمٌ حَكِيمٌ ﴿١٨﴾ إِنَّ الَّذِينَ
يُحِبُّونَ أَنْ تَشِيعَ الْفَاحِشَةُ فِي الَّذِينَ آمَنُوا لَهُمْ عَذَابٌ أَلِيمٌ
فِي الدُّنْيَا وَالْآخِرَةِ وَاللّٰهُ يَعْلَمُ وَأَنْتُمْ لَا تَعْلَمُونَ ﴿١٩﴾ وَلَوْلَا
فَضْلُ اللّٰهِ عَلَيْكُمْ وَرَحْمَتُهُ وَأَنَّ اللّٰهَ رَؤُفٌ رَحِيمٌ ﴿٢٠﴾

يَا أَيُّهَا

11- Bêguman ew kesên ku ev bêbextiya giran (li dayîka misilmanan Aîşeyê) anîn çend kesên ji we ne. Hûn vê yekê ji xwe re xerabî hesêb mekin. Belkî ew ji bo we xêr e. Ji bo her yekî wan bêbextan, guneh heye. Ew ê ku ev gunehê mezin jî hilgirtiye jê re ezabekî mezin heye.

12- Dema we ev (bêbextiya giran) bihîst, de bila we mêr û jinên bawermend der barê hev de zenneke qenc bikira û we bigota ku ev bêbextiyeke aşkera ye.

13- De bila wan (bêbextan) der barê wê (îdîaya xwe) de çar şahid bianîna? Vêca çi dema wan şahid neanîn, îcar li cem Xwedê ew derewker bi xwe ne.

14- Eger li dinya û axretê ne ji qencî û dilovaniya Xwedê ya li ser we bûya, ji ber wê (bêbextiya ku) we xwe noqî wê kiribû, muheqeq dê ezabekî mezin hûn bihingaftina.

15- (Ezab dê bihingifta we) wê dema we bi zimanên xwe ji hev re radigihand û we bi devên xwe (ev bêbextî)ya ku der barê diya mumînan xatûna Aîşe de bê zanîn we digot. We hizir dikir ku ew tiştekî biçûk û hêsan e, hal ev e ku li cem Xwedê ew pir mezin e.

16- Dema we ew (bêbextî) bihîst de bila we bigota, ne babet e ji bo me ku em bi vê bipeyivin. Haşa ji Xwedê! Ev, bêbextiyeke pir mezin e!

17- Xwedê li we şîret dike, heya ku hûn sax bin da ku careke din li bêbextiyeke wiha venegerin, eger bi rastî hûn bawermend in.

18- Xwedê (der barê ferman û qedexeyên xwe de) ji we re ayetên xwe aşkera dike, Xwedê zana ye, xwedîhîkmet e.

19- Bêguman ew ên hez dikin (û pê xweş in) ku kiryarên xerab (mîna zinayê) di nav wan de yên ku wan bawerî aniye, belav bibe (û bikeve stûyê wan), ji wan re hem li dinyayê hem jî li axretê ezabekî cansoj heye. Xwedê Teala dizane û hûn nizanin.

20- Eger ne ji kerem û rehma Xwedê ya li ser we bûya (hûn ê bihetikîna û helak bûna). Bêguman Xwedê Teala xwedîşefqet e, dilovîn e.

يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا لَا تَتَّبِعُوا خُطُوَاتِ الشَّيْطَانِؕ وَمَنْ يَتَّبِعْ
خُطُوَاتِ الشَّيْطَانِ فَاِنَّهُ يَأْمُرُ بِالْفَحْشَٓاءِ وَالْمُنْكَرِؕ وَلَوْلَا فَضْلُ
اللّٰهِ عَلَيْكُمْ وَرَحْمَتُهُ مَا زَكٰى مِنْكُمْ مِنْ اَحَدٍ اَبَدًاۙ وَلٰكِنَّ اللّٰهَ
يُزَكّ۪ي مَنْ يَشَٓاءُؕ وَاللّٰهُ سَم۪يعٌ عَل۪يمٌ ﴿٢١﴾ وَلَا يَأْتَلِ اُو۬لُوا الْفَضْلِ
مِنْكُمْ وَالسَّعَةِ اَنْ يُؤْتُٓوا اُو۬لِي الْقُرْبٰى وَالْمَسَاك۪ينَ وَالْمُهَاجِر۪ينَ
ف۪ي سَب۪يلِ اللّٰهِ وَلْيَعْفُوا وَلْيَصْفَحُواؕ اَلَا تُحِبُّونَ اَنْ يَغْفِرَ اللّٰهُ لَكُمْؕ
وَاللّٰهُ غَفُورٌ رَح۪يمٌ ﴿٢٢﴾ اِنَّ الَّذ۪ينَ يَرْمُونَ الْمُحْصَنَاتِ الْغَافِلَاتِ
الْمُؤْمِنَاتِ لُعِنُوا فِي الدُّنْيَا وَالْاٰخِرَةِ وَلَهُمْ عَذَابٌ عَظ۪يمٌۙ ﴿٢٣﴾
يَوْمَ تَشْهَدُ عَلَيْهِمْ اَلْسِنَتُهُمْ وَاَيْد۪يهِمْ وَاَرْجُلُهُمْ بِمَا كَانُوا
يَعْمَلُونَ ﴿٢٤﴾ يَوْمَئِذٍ يُوَفّ۪يهِمُ اللّٰهُ د۪ينَهُمُ الْحَقَّ وَيَعْلَمُونَ اَنَّ اللّٰهَ
هُوَ الْحَقُّ الْمُب۪ينُ ﴿٢٥﴾ اَلْخَب۪يثَاتُ لِلْخَب۪يث۪ينَ وَالْخَب۪يثُونَ لِلْخَب۪يثَاتِۚ
وَالطَّيِّبَاتُ لِلطَّيِّب۪ينَ وَالطَّيِّبُونَ لِلطَّيِّبَاتِۚ اُو۬لٰٓئِكَ مُبَرَّؤُ۫نَ
مِمَّا يَقُولُونَؕ لَهُمْ مَغْفِرَةٌ وَرِزْقٌ كَر۪يمٌ ﴿٢٦﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ
اٰمَنُوا لَا تَدْخُلُوا بُيُوتًا غَيْرَ بُيُوتِكُمْ حَتّٰى تَسْتَأْنِسُوا
وَتُسَلِّمُوا عَلٰٓى اَهْلِهَاؕ ذٰلِكُمْ خَيْرٌ لَكُمْ لَعَلَّكُمْ تَذَكَّرُونَ ﴿٢٧﴾

**21**- Gelî yên ku bawerî anîne! Nedin pey şûngavên şeytên. Kî bide pey şûngavên şeytên, (bila bizane ku) bêguman şeytan fermanê bi bêtoretî û kiryarên neqenc dike. Eger qencî û rehma Xwedê li ser we nebûya (ku deriyê tobeyê li we vekiriye), ji we tu kes (ji gunehê bêbextiya der barê diya me Aîşe de) paqij nedima. Lê belê Xwedê kî bivê wî paqij dike û Xwedê bihîzer e, zana ye.

**22**- Bila ji we, ew ên ku bêhnpak û xwedîserwet in sond nexwin ku êdî (ji malê xwe) dê nedin xizman, belengazan û yên ku di riya Xwedê de muhacir (derbeder) bûne; bila li wan biborin û li wan negirin. Ma hûn hez nakin ku Xwedê Teala jî li gunehên we bibore? Xwedê gunehjêbir e, dilovîn e.

**23**- Bêguman ew ên ku jinên dawpaqij ên (ji zinayê) bêagahên bawermend bi zinayê sûcdar dikin, li dinya û axretê lanet li wan hatiye barandin û ji bo wan ezabekî mezin heye.

**24**- Wê rojê dê zimanên wan, destên wan û piyên wan ji ber a ku kirine, li ser wan şahdeyî bidin.

**25**- Wê rojê Xwedê dê cezayê wan bêkêmasî bide wan û ew ê bizanin ku Xweda Heq bi xwe ye.

**26**- Jinên dilxerab ji bo mêrên dilxerab in, zilamên dilxerab jî ji bo jinên dilxerab in û, jinên dilpak ji bo mêrên dilpak in, mêrên dilpak jî ji bo jinên dilpak in. Ha ev (ên dawîn) ji wê bêbextiya ku (der barê wan de) dibêjin, dûr û pak in. Ji bo wan lêborînek û rizqekî birûmet heye.

**27**- Gelî yên ku bawerî anîne! Ji bilî mala xwe, heta ku hûn destûrê nexwazin û li ser xelkê wê silavê nedin, neçin tu malê. Ev ji we re (ji çûna bêdestûrxwestinê) çêtir e, da ku hûn bifikirin û têbigihîjin.

Ev ayeta pîroz, rêz û toreyeke bêhnpakî û qaîdeyeke pir girîng a şarezayiyê hînî mirovatiyê dike ku ew jî ev e: Mirovek gava biçe mala yekî, divê pêşî destûrê bixwaze, piştî ku jê re destûr hate dayîn, silava îslamê li xelkê wê malê bike. Li gorî ku hatiye rîwayetkirin, zilamekî ji Pêxemberê Xwedê (s) re got: " Ma ez destûra çûna malê ji diya xwe jî bixwazim? Got: Belê. Zilamî got: Ji min pê ve tu xizmetkarê wê tun in. Ma her gava ez biçim malê dîsa ez destûrê jê bixwazim? Got: Ma tu hez dikî ku dayîka xwe tazî bibînî? Got: Na. Got: Naxwe jê destûrê bixwaze." Ev şîreta ku Pêxember (s) li wî zilamî kir jî, girîngî û pêdiviya vê qaîdeyê nîşan dide û dide zanîn ku îslamê çi qasî şeref û rûmet daye însên, rêz û hurmeta wî girtiye, mafê wî parastiye. Lewra Îslam medeniyet bi xwe ye.

فَاِنْ لَمْ تَجِدُوا فٖيهَٓا اَحَدًا فَلَا تَدْخُلُوهَا حَتّٰى يُؤْذَنَ لَكُمْۚ
وَاِنْ قٖيلَ لَكُمُ ارْجِعُوا فَارْجِعُوا هُوَ اَزْكٰى لَكُمْۜ وَاللّٰهُ
بِمَا تَعْمَلُونَ عَلٖيمٌ ﴿٢٨﴾ لَيْسَ عَلَيْكُمْ جُنَاحٌ اَنْ تَدْخُلُوا
بُيُوتًا غَيْرَ مَسْكُونَةٍ فٖيهَا مَتَاعٌ لَكُمْۜ وَاللّٰهُ يَعْلَمُ مَا تُبْدُونَ
وَمَا تَكْتُمُونَ ﴿٢٩﴾ قُلْ لِلْمُؤْمِنٖينَ يَغُضُّوا مِنْ اَبْصَارِهِمْ
وَيَحْفَظُوا فُرُوجَهُمْۜ ذٰلِكَ اَزْكٰى لَهُمْۜ اِنَّ اللّٰهَ خَبٖيرٌ بِمَا
يَصْنَعُونَ ﴿٣٠﴾ وَقُلْ لِلْمُؤْمِنَاتِ يَغْضُضْنَ مِنْ اَبْصَارِهِنَّ
وَيَحْفَظْنَ فُرُوجَهُنَّ وَلَا يُبْدٖينَ زٖينَتَهُنَّ اِلَّا مَا ظَهَرَ مِنْهَا
وَلْيَضْرِبْنَ بِخُمُرِهِنَّ عَلٰى جُيُوبِهِنَّۖ وَلَا يُبْدٖينَ زٖينَتَهُنَّ اِلَّا
لِبُعُولَتِهِنَّ اَوْ اٰبَٓائِهِنَّ اَوْ اٰبَٓاءِ بُعُولَتِهِنَّ اَوْ اَبْنَٓائِهِنَّ اَوْ اَبْنَٓاءِ
بُعُولَتِهِنَّ اَوْ اِخْوَانِهِنَّ اَوْ بَنٖٓى اِخْوَانِهِنَّ اَوْ بَنٖٓى اَخَوَاتِهِنَّ اَوْ
نِسَٓائِهِنَّ اَوْ مَا مَلَكَتْ اَيْمَانُهُنَّ اَوِ التَّابِعٖينَ غَيْرِ اُو۬لِى
الْاِرْبَةِ مِنَ الرِّجَالِ اَوِ الطِّفْلِ الَّذٖينَ لَمْ يَظْهَرُوا عَلٰى عَوْرَاتِ
النِّسَٓاءِۖ وَلَا يَضْرِبْنَ بِاَرْجُلِهِنَّ لِيُعْلَمَ مَا يُخْفٖينَ مِنْ زٖينَتِهِنَّۜ
وَتُوبُٓوا اِلَى اللّٰهِ جَمٖيعًا اَيُّهَ الْمُؤْمِنُونَ لَعَلَّكُمْ تُفْلِحُونَ ﴿٣١﴾

وَاَنْكِحُوا

**28**- Eger li wê (malê) we tu kes nedît, (ku destûrê bide we), heyanî ji we re destûr neyê dayîn neçin wir. Eger ji we re bê gotin: “Vegerin!” di cih de vegerin. Lewra ev (vegerîn) ji bo we (ji rûniştina li ber derî) paktir e. Xwedê Teala bi ya ku hûn dikin dizane.

**29**- Li ser we tu guneh tune ye ku (bêdestûr) hûn biçine xaniyên ku malbat tê de ne niştecî ne, ew ên ku ji bo we cihê feydewergirtinê ne (mîna xan, xwaringeh û dezgehên giştî). Xwedê bi ya ku hûn aşkera dikin û bi ya ku hûn vedişêrin, dizane.

**30**- Ji zilamên bawermend re bibêje, bila çavên xwe (ji heramiyê) bigirin, ewretên (şermegeha) xwe biparêzin. Lewra ev (çavgirtin û namûsparêzî) ji bo wan çêtir e. Bêguman Xwedê Teala ji ya ku ew dikin agahdar e.

Li gorî ji ‘Elî (X) hatiye ragihandin, di dema Pêxemberê Xwedê (s) de zilamek di rêyekê ji riyên Medînê re derbas bûye, li jinekê meyzandiye, jinê jî li wî meyzandiye. Vêca şeytan tase-was ji her duyan re çêkiriye ku sirf ji bo ku wan hev ecibandiye, li hev nêrîne. Di vê navê de ew zilam bi ber dîwarekî ve diçû û li wê dimeyzand, vêca ji nişka ve serê xwe li dîwêr xist û pozê wî qelişî. Êdî zilamî got: Ez bi Xwedê sond dixwim ku ez ê xwînê neşom heta ku ez biçim bal Pêxember (s) û rewşa xwe jê re bidim zanîn! Vêca ew hat balê û meseleya xwe jê re ragihand. Pêxember (s) jê re got: Ev cezayê gunehê te ye. Vêca Xwedê di bara vê mijarê de ev ayet nazil kir û hukmê xwe ragihand.

**31**- Ji jinên bawermend re jî bibêje: Bila çavên xwe (ji nêrîna heram) bigirin, îffet û şermegeha xwe biparêzin, ji beşa ku xuya dike pê ve -ew ne tê de ye- bila xeml û zîneta xwe dernexin der. Bila çarikên xwe berdin ser sîngên xwe. Bila xişrên xwe ji bilî mêrên xwe, bavên xwe, xezûrên xwe, kurên xwe, kurên mêrên xwe, birayên xwe, biraziyên xwe, xwarziyên xwe, jinên digel xwe, qerwaşên xwe yên ku di bin destên wan de ne, ji mêran jî ew xîzmetkarên ku tu pêdiviya wan bi jinan nemaye yan jî ew zarokên ku hê negihane ku dilê wan biçe deverên veşartî yên jinan, nîşanî tu kesî din nedin. Bila (bi tepînî) lingên xwe li erdê nedin ku êdî xişrên wan ên veşartî bêne zanîn. Gelî bawermendan! Tev bi bal Xwedê ve tobe bikin da ku hûn (hem li dinyayê hem jî li axretê) serfiraz bibin.

وَاَنْكِحُوا الْاَيَامٰى مِنْكُمْ وَالصَّالِحٖينَ مِنْ عِبَادِكُمْ وَاِمَائِكُمْۜ اِنْ
يَكُونُوا فُقَرَٓاءَ يُغْنِهِمُ اللّٰهُ مِنْ فَضْلِهٖۜ وَاللّٰهُ وَاسِعٌ عَلٖيمٌ ٣٢
وَلْيَسْتَعْفِفِ الَّذٖينَ لَا يَجِدُونَ نِكَاحًا حَتّٰى يُغْنِيَهُمُ اللّٰهُ مِنْ فَضْلِهٖۜ
وَالَّذٖينَ يَبْتَغُونَ الْكِتَابَ مِمَّا مَلَكَتْ اَيْمَانُكُمْ فَكَاتِبُوهُمْ اِنْ
عَلِمْتُمْ فٖيهِمْ خَيْرًاۗ وَاٰتُوهُمْ مِنْ مَالِ اللّٰهِ الَّذٖٓى اٰتٰيكُمْۜ وَلَا تُكْرِهُوا
فَتَيَاتِكُمْ عَلَى الْبِغَٓاءِ اِنْ اَرَدْنَ تَحَصُّنًا لِتَبْتَغُوا عَرَضَ الْحَيٰوةِ
الدُّنْيَاۜ وَمَنْ يُكْرِهْهُنَّ فَاِنَّ اللّٰهَ مِنْ بَعْدِ اِكْرَاهِهِنَّ غَفُورٌ
رَحٖيمٌ ٣٣ وَلَقَدْ اَنْزَلْنَٓا اِلَيْكُمْ اٰيَاتٍ مُبَيِّنَاتٍ وَمَثَلًا مِنَ الَّذٖينَ
خَلَوْا مِنْ قَبْلِكُمْ وَمَوْعِظَةً لِلْمُتَّقٖينَ ٣٤ اَللّٰهُ نُورُ السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضِۜ مَثَلُ نُورِهٖ كَمِشْكٰوةٍ فٖيهَا مِصْبَاحٌۜ اَلْمِصْبَاحُ فٖى زُجَاجَةٍۜ
اَلزُّجَاجَةُ كَاَنَّهَا كَوْكَبٌ دُرِّيٌّ يُوقَدُ مِنْ شَجَرَةٍ مُبَارَكَةٍ
زَيْتُونَةٍ لَا شَرْقِيَّةٍ وَلَا غَرْبِيَّةٍۙ يَكَادُ زَيْتُهَا يُضٖٓيءُ وَلَوْ لَمْ
تَمْسَسْهُ نَارٌۜ نُورٌ عَلٰى نُورٍۜ يَهْدِى اللّٰهُ لِنُورِهٖ مَنْ يَشَٓاءُۜ وَيَضْرِبُ
اللّٰهُ الْاَمْثَالَ لِلنَّاسِۜ وَاللّٰهُ بِكُلِّ شَيْءٍ عَلٖيمٌۙ ٣٥ فٖى بُيُوتٍ اَذِنَ اللّٰهُ
اَنْ تُرْفَعَ وَيُذْكَرَ فٖيهَا اسْمُهُۙ يُسَبِّحُ لَهُ فٖيهَا بِالْغُدُوِّ وَالْاٰصَالِۙ ٣٦

32- (Gelî mumînan!) Ezebên xwe bizewicînin û kole û qerwaşên xwe yên qencîkar jî bizewicînin. Eger ew xizan bin, Xwedê Teala ji kerema xwe (bi zewacê) dê wan dewlemend bike. Xwedê Teala xwedanê keremeke berfireh e û zanayê bi kiryarên îbadên xwe ye.

33- Ew kesên ku derfeta zewacê nabînin bila namûsa xwe biparêzin (bila xwe bidin zehmetê û bila xwe ragirin), heyanî ku Xwedê Teala ji qenciya xwe wan dewlemend bike (êdî ku karîn bizewicin bila ew jî bizewicin). Ew (kole û qerwaş)ên we, ew ên ku dixwazin bi we re tifaqekê çêkin da ku azad bibin, vêca eger hûn ji wan emîn bin ku ew ê vê tifaqê pêk bînin, bi wan re (li ser hinek mal) tifaqa mukatebê deynin û ji wî malê ku Xwedê Teala daye we hinekî bidin wan (kole û qerwaşên ku tifaqa bi xwendê xwe re kirine, da ku serbestiya xwe bistînin). Ji bo ku hûn hinek malê dinyayê bi dest bixin, eger ew paqijî û xweparêziyê bixwazin (yan jî nexwazin) bi kotekî qerwaşên xwe nedine zinakirin. Kî ku kotekiyê li wan bike, vêca bêguman piştî zordestiya we li ser wan, Xwedê Teala, gunehjêbir e, dilovîn e.

34- (Gelî bawermendan!) Sond be ku me ayetên aşkeraker (ên ku pêdiviya we bi wan hebûye) û qiseyên (serpêhatiyên) wan kesên ku beriya we borîne ji we re anîne ku ew ji bo teqwedaran pend û şîret in.

35- Ellah Teala ronîkerê erd û asîmanan e. Mînaka ronahiya Wî, wekî kulekekê ye ku tê de çira be. Ew çira jî di nav şûşeyekê de be, ew şûşe jî her wekî stêreke ronak be ku (ronahiya wê) ji dareke pîroz be ku dara zeytûnê ye, ne li rojhilat e ne jî li rojava ye, nêzîk e ku zeyta wê ronahî bide, çendî ku agir negihîjê jî. (Ev ronahî) nûra li ser nûrê ye. Xwedê kî ku nûra wî bivê wî bi bal ve rasterê dike û Xwedê ji bo mirovan derb û meselan tîne (da ku têbigihîjin, jê ders wergirin û bawerî bînin). Xwedê bi her tiştî dizane.

36- (Ev ronahî) di hin mal û mizgeftên welê de ye ku Xweda ferman daye da ew (mal) bêne mezinkirin û navê Xwedê di wan de were gotin û di wan de sibeh û êvaran (pênc wext) ji bo Xwedê nimêj bête kirin.

رِجَالٌ لَا تُلْهِيهِمْ تِجَارَةٌ وَلَا بَيْعٌ عَنْ ذِكْرِ اللّٰهِ وَاِقَامِ الصَّلٰوةِ
وَاِيتَاءِ الزَّكٰوةِ يَخَافُونَ يَوْمًا تَتَقَلَّبُ فِيهِ الْقُلُوبُ وَالْاَبْصَارُ ﴿٣٧﴾
لِيَجْزِيَهُمُ اللّٰهُ اَحْسَنَ مَا عَمِلُوا وَيَزِيدَهُمْ مِنْ فَضْلِهِ وَاللّٰهُ يَرْزُقُ
مَنْ يَشَاءُ بِغَيْرِ حِسَابٍ ﴿٣٨﴾ وَالَّذِينَ كَفَرُوا اَعْمَالُهُمْ كَسَرَابٍ بِقِيعَةٍ
يَحْسَبُهُ الظَّمْاٰنُ مَاءً حَتّٰى اِذَا جَاءَهُ لَمْ يَجِدْهُ شَيْـًٔا وَوَجَدَ اللّٰهَ
عِنْدَهُ فَوَفّٰيهُ حِسَابَهُ وَاللّٰهُ سَرِيعُ الْحِسَابِ ﴿٣٩﴾ اَوْ كَظُلُمَاتٍ
فِي بَحْرٍ لُجِّيٍّ يَغْشٰيهُ مَوْجٌ مِنْ فَوْقِهِ مَوْجٌ مِنْ فَوْقِهِ سَحَابٌ
ظُلُمَاتٌ بَعْضُهَا فَوْقَ بَعْضٍ اِذَا اَخْرَجَ يَدَهُ لَمْ يَكَدْ يَرٰيهَا وَمَنْ
لَمْ يَجْعَلِ اللّٰهُ لَهُ نُورًا فَمَا لَهُ مِنْ نُورٍ ﴿٤٠﴾ اَلَمْ تَرَ اَنَّ اللّٰهَ يُسَبِّحُ
لَهُ مَنْ فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَالطَّيْرُ صَٓافَّاتٍ كُلٌّ قَدْ عَلِمَ
صَلَاتَهُ وَتَسْبِيحَهُ وَاللّٰهُ عَلِيمٌ بِمَا يَفْعَلُونَ ﴿٤١﴾ وَلِلّٰهِ مُلْكُ السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضِ وَاِلَى اللّٰهِ الْمَصِيرُ ﴿٤٢﴾ اَلَمْ تَرَ اَنَّ اللّٰهَ يُزْجِي سَحَابًا ثُمَّ
يُؤَلِّفُ بَيْنَهُ ثُمَّ يَجْعَلُهُ رُكَامًا فَتَرَى الْوَدْقَ يَخْرُجُ مِنْ خِلَالِهِ
وَيُنَزِّلُ مِنَ السَّمَاءِ مِنْ جِبَالٍ فِيهَا مِنْ بَرَدٍ فَيُصِيبُ بِهِ مَنْ يَشَاءُ
وَيَصْرِفُهُ عَنْ مَنْ يَشَاءُ يَكَادُ سَنَا بَرْقِهِ يَذْهَبُ بِالْاَبْصَارِ ﴿٤٣﴾
يُقَلِّبُ

**37**- Hin merivên wisa (di wan de hene) ku ne bazirganî ne jî danûstandin nikare ji bîranîna (navê) Ellah Teala, ji kirina nimêjê û dana zekatê wan mijûl bike. Ew ji rojeke wisa ditirsin ku tê de dil û çav serûbinî hev dibin.

**38**- Da Xwedê Teala, ji ya ku kirine xelata herî spehî bide wan û ji kerem û qenciya xwe ji wan re hê zêdetir bike. Xwedê kê bivê bêhesab û bêhejmar riziq didê.

**39**- Ew ên ku kafir bûne keda (kirinên) wan, li deşteke tenha wekî leylanekê ye ku ji kesê tî we ye ku ew av e, paşê dema ku bigihîje wê li wir tiştekî nabîne, veca ew li wê dere leqayî Xwedayê xwe dibe, êdî hesabê wî dibîne. Xwedê Teala hesabdîtina wî bi lez e.

**40**- Yan jî (keda karê kafiran) wekî tarîtiyên di behreke kûr de ye (deryayeke wisa) ku pêl li ser pêlê bilind bibe, li ser van pêlan pêleke din bilind bibe û di ser wê re jî ewrekî (reş û tarî) hebe. Ev tarîstan in, tarîstanê li ser tarîstanê ne. (Tarîstaneke wisa) eger ku mirov destê xwe derîne nikare destê xwe bibîne. Ew kesê ku Xwedê Teala ronahiyek nedabe wî (yanî ew neanîbe ser riya rast), vêca jê re tu ronahiyeke (din) tune ye.

**41**- (Ya Muhemmed!) Ma tu nizanî ku yên li erd û asîmanan hene û teyrên li hewayê basikvekirî, (ev tev) Xwedê Teala pak didêrin (û jê re nimêj dikin)? Her yek ji wan nimêj û tesbîhê xwe zanibûne. Xwedê Teala bi ya ku ew dikin dizane.

**42**- Xwedanî û hukimraniya erd û asîmanan her ji Xwedê re ye û veger jî her bi bal Xweda ve ye.

**43**- Ma tu nizanî ku Xwedê Teala (ku derê bivê) ewran diajo ser wir; piştre wan tîne bal hev, piştre wan li ser hev dike şikêr, vêca tu dibînî ku ji nava wan (ewran) baran dibare. Xwedê Teala ji ewrên mîna çiyan teyrokê dibarîne. Îcar Xwedê kê bivê bi teyrokê lê dixe, kê jî bivê wê ji (ser) wî vedigerîne. Hindik dimîne ku roniya birûskan çavan kor bike!

يُقَلِّبُ اللّٰهُ الَّيْلَ وَالنَّهَارَ اِنَّ ف۪ي ذٰلِكَ لَعِبْرَةً لِاُو۬لِي الْاَبْصَارِ ﴿٤٤﴾
وَاللّٰهُ خَلَقَ كُلَّ دَٓابَّةٍ مِنْ مَٓاءٍ فَمِنْهُمْ مَنْ يَمْش۪ي عَلٰى بَطْنِه۪ وَمِنْهُمْ
مَنْ يَمْش۪ي عَلٰى رِجْلَيْنِ وَمِنْهُمْ مَنْ يَمْش۪ي عَلٰٓى اَرْبَعٍ يَخْلُقُ اللّٰهُ
مَا يَشَٓاءُ اِنَّ اللّٰهَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَد۪يرٌ ﴿٤٥﴾ لَقَدْ اَنْزَلْنَٓا اٰيَاتٍ مُبَيِّنَاتٍ
وَاللّٰهُ يَهْد۪ي مَنْ يَشَٓاءُ اِلٰى صِرَاطٍ مُسْتَق۪يمٍ ﴿٤٦﴾ وَيَقُولُونَ اٰمَنَّا
بِاللّٰهِ وَبِالرَّسُولِ وَاَطَعْنَا ثُمَّ يَتَوَلّٰى فَر۪يقٌ مِنْهُمْ مِنْ بَعْدِ ذٰلِكَ
وَمَٓا اُو۬لٰٓئِكَ بِالْمُؤْمِن۪ينَ ﴿٤٧﴾ وَاِذَا دُعُٓوا اِلَى اللّٰهِ وَرَسُولِه۪ لِيَحْكُمَ
بَيْنَهُمْ اِذَا فَر۪يقٌ مِنْهُمْ مُعْرِضُونَ ﴿٤٨﴾ وَاِنْ يَكُنْ لَهُمُ الْحَقُّ يَأْتُٓوا
اِلَيْهِ مُذْعِن۪ينَ ﴿٤٩﴾ اَف۪ي قُلُوبِهِمْ مَرَضٌ اَمِ ارْتَابُٓوا اَمْ يَخَافُونَ اَنْ
يَح۪يفَ اللّٰهُ عَلَيْهِمْ وَرَسُولُهُ بَلْ اُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الظَّالِمُونَ ﴿٥٠﴾ اِنَّمَا
كَانَ قَوْلَ الْمُؤْمِن۪ينَ اِذَا دُعُٓوا اِلَى اللّٰهِ وَرَسُولِه۪ لِيَحْكُمَ بَيْنَهُمْ
اَنْ يَقُولُوا سَمِعْنَا وَاَطَعْنَا وَاُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الْمُفْلِحُونَ ﴿٥١﴾ وَمَنْ يُطِعِ
اللّٰهَ وَرَسُولَهُ وَيَخْشَ اللّٰهَ وَيَتَّقْهِ فَاُو۬لٰٓئِكَ هُمُ الْفَٓائِزُونَ ﴿٥٢﴾
وَاَقْسَمُوا بِاللّٰهِ جَهْدَ اَيْمَانِهِمْ لَئِنْ اَمَرْتَهُمْ لَيَخْرُجُنَّ قُلْ
لَا تُقْسِمُوا طَاعَةٌ مَعْرُوفَةٌ اِنَّ اللّٰهَ خَب۪يرٌ بِمَا تَعْمَلُونَ ﴿٥٣﴾

حزب

44- Xwedê, şevê û rojê li hev werdigerîne (yekê li pey yekê tîne, yekê dirêj dike ya dî kurt dike, yekê sar dike ya dî jî germ dike), bêguman di vê de ji bo aqilmendan îbretek heye (ku şiyan û qudreta Xwedayê Teala nîşan dide).

45- Xwedê her rêveherek ji avê afirandiye. Ji wan hinek li ser zikê xwe dimeşin, hinek jî li ser du lingan, hinek jî li ser çar lingan dimeşin. Xwedê Teala ya ku bivê diafirîne, bêguman Xwedê Teala li ser her tiştî kara ye.

46- Sond be ku me ayetên aşkeraker hinartine. Xweda yê ku hîdayetê bivê wî li serê rasterê dike.

47- Dibêjin: Me bawerî bi Xwedê Teala û bi Pêxemberê wî anî û me bi gotina (wan) kir. Piştî wê jî, desteyekê ji wan berê xwe (ji heqiyê) vedigerînin. Ha ew (ên ku berê xwe vedigerînin) ne bawermend in.

Ev ayeta pîroz dide zanîn ku baweriya bi zimanî tenê ne bes e. Lewra ew rewş rewşa zendîq û munafiqan e. Her çî ku muminên rasteqîne ne, hem bi zimanê xwe baweriyê tînin, bi dilê xwe bawer dikin û emel û bizavên wan jî tesdîqa îmana wan dike.

48- (Ew) Dema bang li wan were kirin da ku bêne cem Xwedê û Pêxemberê wî da ku di navbera wan de hukim bike, tu dinêrî ku desteyek ji wan berê xwe jê vedigerînin, pişta xwe didinê.

49- Lê belê eger ew (hukimdayîna Pêxember) heq bide wan, ew ji dil û can tên ber (hukmê) wî û bi gotina wî dikin.

50- Erê ma di dilê wan de nexweşî (ya nîfaqê) heye, yan jî (der barê pêxemberiya Muhemmed de) ketine gumanê? Yan jî ew ditirsin ku Xwedê Teala û Pêxemberê wî neheqiyê li wan bikin? Nexêr, ne wisan e, belkî ew bi xwe zalim in!

51- Dema ku bawermend bi bal hukmê Xwedê û Pêxemberê wî ve bêne vexwendin da ku (Pêxember) di nav wan de hukim bike, gotina wan bes ev e: Me seh kir û em bi gotina te dikin. Ha ew in ên serfiraz.

52- Ḥeçî kesê ku bi gotina Xwedê Teala û Pêxemberê wî bike, ji (ezabê) Xwedê Teala bitirse û xwe ji (heramiyan) biparêze, ha ew in ên serfiraz.

53- Wan munafiqan bi sonda herî asê sond xwar ku eger te ferman (a derketina cîhadê) li wan bikira, muheqeq dê ew derketina (cîhadê). Bibêje: Sond nexwin, îtaet û guhdariya we aşîkar e! Bêguman Xwedê Teala ji ya ku hûn dikin agahdar e.

قُلْ اَطٖيعُوا اللّٰهَ وَاَطٖيعُوا الرَّسُولَ فَاِنْ تَوَلَّوْا فَاِنَّمَا عَلَيْهِ
مَا حُمِّلَ وَعَلَيْكُمْ مَا حُمِّلْتُمْ وَاِنْ تُطٖيعُوهُ تَهْتَدُوا وَمَا عَلَى
الرَّسُولِ اِلَّا الْبَلَاغُ الْمُبٖينُ ﴿٥٤﴾ وَعَدَ اللّٰهُ الَّذٖينَ اٰمَنُوا مِنْكُمْ
وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ لَيَسْتَخْلِفَنَّهُمْ فِى الْاَرْضِ كَمَا اسْتَخْلَفَ
الَّذٖينَ مِنْ قَبْلِهِمْ وَلَيُمَكِّنَنَّ لَهُمْ دٖينَهُمُ الَّذِى ارْتَضٰى لَهُمْ
وَلَيُبَدِّلَنَّهُمْ مِنْ بَعْدِ خَوْفِهِمْ اَمْنًا يَعْبُدُونَنٖى لَا يُشْرِكُونَ بٖى شَيْـًٔا
وَمَنْ كَفَرَ بَعْدَ ذٰلِكَ فَاُولٰٓئِكَ هُمُ الْفَاسِقُونَ ﴿٥٥﴾ وَاَقٖيمُوا
الصَّلٰوةَ وَاٰتُوا الزَّكٰوةَ وَاَطٖيعُوا الرَّسُولَ لَعَلَّكُمْ تُرْحَمُونَ ﴿٥٦﴾
لَا تَحْسَبَنَّ الَّذٖينَ كَفَرُوا مُعْجِزٖينَ فِى الْاَرْضِ وَمَاْوٰيهُمُ
النَّارُ وَلَبِئْسَ الْمَصٖيرُ ﴿٥٧﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذٖينَ اٰمَنُوا لِيَسْتَاْذِنْكُمُ
الَّذٖينَ مَلَكَتْ اَيْمَانُكُمْ وَالَّذٖينَ لَمْ يَبْلُغُوا الْحُلُمَ مِنْكُمْ ثَلٰثَ
مَرَّاتٍ مِنْ قَبْلِ صَلٰوةِ الْفَجْرِ وَحٖينَ تَضَعُونَ ثِيَابَكُمْ مِنَ الظَّهٖيرَةِ
وَمِنْ بَعْدِ صَلٰوةِ الْعِشَٓاءِ ثَلٰثُ عَوْرَاتٍ لَكُمْ لَيْسَ عَلَيْكُمْ وَلَا
عَلَيْهِمْ جُنَاحٌ بَعْدَهُنَّ طَوَّافُونَ عَلَيْكُمْ بَعْضُكُمْ عَلٰى بَعْضٍ
كَذٰلِكَ يُبَيِّنُ اللّٰهُ لَكُمُ الْاٰيَاتِ وَاللّٰهُ عَلٖيمٌ حَكٖيمٌ ﴿٥٨﴾

وَاِذَا

**54**- (Ji wan re) Bibêje: Bi gotina Xwedê û Pêxemberê wî bikin. Eger wan guhdarî nekir, vêca bizanin ku Pêxember ji ya li ser xwe (wezîfeya teblîxê) berpirs e (vêca wî ew bi cîh anî) û hûn jî ji wezîfeya ku li ser we hatiye barkirin berpirs in. Eger hûn bi gotina Pêxember bikin, hûn ê rasterê bibin. Wezîfeya Pêxember ji ragihandina ronkar û aşkera pê ve ne tiştekî din e.

Ev ayeta pîroz di çaxekî wilo de daketiye ku pêxember, ji nû dest bi teblîxê kiribû, misliman hê lawaz bûn, zulm û zor li wan dihat kirin, ev ayet mizgîn dida wan ku misliman piştî demeke nêz dê zora muşrikan bibin û desthilatî, dê bikeve destê wan û dînê wan dê belav bibe, bi ser bikeve.

**55**- Xwedê ji nav we peyman daye wan kesên ku bawerî anî û karên qenc kirine; ku teqez dê wan li şûna hinekên din li erdê bike şûngir, ka çawa ew ên beriya wan jî li şûna hinekên din kiribûn şûngir. Ew ê dînê wan (îslamê) desthilat bike, ew dînê ku Xwedê ji bo wan hilbijartiye û pê razî bûye. Ew ê rewşa wan piştî tirsa wan (ji kafiran) bi ewlehî û tenahiyê biguherîne. Ew ê îbadeta min bikin û dê tiştekî ji min re nekin hevpişk. Êdî piştî vê kî nankoriyê bike vêca ha ew fasiq bi xwe ne.

**56**- Bi awayê pêdivî nimêj bikin, zekata malê xwe bidin û bi gotina Pêxember bikin da ku rehmet li we bê kirin.

**57**- (Ya Muhemmed!) Tu hizir neke ku ew ên kafir bûne wan zora Xwedê biriye ku li ser erdê nehatine ezabdan! Cihê wan agir e, ew çi pîsecih e û çi pîs wargeh e!

**58**- Gelî yên ku bawerî anîne! Bila ew ên ku di bin destên we de (kole û cariyeyên we) û ew ên ku ji we hê balix nebûne di sê deman de ji we destûrê bixwazin (ji bo ku werin cem we); beriya nimêja spêdeyê (fecrê), dema nîvro wexta ku hûn cilên xwe datînin û piştî nimêja eşayê. Ji we re ew sê demên bi tenêmayînê ne. Piştî van sê deman ne ji we re ne jî ji wan re tu guneh tune ye (ku bêdestûr hûn bêne cem hev). Hin ji we li ser hinan digerin; diçin û tên. Her wisa Xweda ji we re ayetan/hukman aşkera dike û Xwedê (di kar û barê xwe de) zana ye, karbinecih e

وَاِذَا بَلَغَ الْاَطْفَالُ مِنْكُمُ الْحُلُمَ فَلْيَسْتَاْذِنُوا كَمَا
اسْتَاْذَنَ الَّذِينَ مِنْ قَبْلِهِمْ كَذٰلِكَ يُبَيِّنُ اللّٰهُ لَكُمْ
اٰيَاتِهِ وَاللّٰهُ عَلِيمٌ حَكِيمٌ ﴿٥٩﴾ وَالْقَوَاعِدُ مِنَ النِّسَٓاءِ
الّٰتِى لَا يَرْجُونَ نِكَاحًا فَلَيْسَ عَلَيْهِنَّ جُنَاحٌ اَنْ يَضَعْنَ
ثِيَابَهُنَّ غَيْرَ مُتَبَرِّجَاتٍ بِزِينَةٍ وَاَنْ يَسْتَعْفِفْنَ خَيْرٌ لَهُنَّ
وَاللّٰهُ سَمِيعٌ عَلِيمٌ ﴿٦٠﴾ لَيْسَ عَلَى الْاَعْمٰى حَرَجٌ وَلَا عَلَى
الْاَعْرَجِ حَرَجٌ وَلَا عَلَى الْمَرِيضِ حَرَجٌ وَلَا عَلٰٓى اَنْفُسِكُمْ
اَنْ تَاْكُلُوا مِنْ بُيُوتِكُمْ اَوْ بُيُوتِ اٰبَٓائِكُمْ اَوْ بُيُوتِ
اُمَّهَاتِكُمْ اَوْ بُيُوتِ اِخْوَانِكُمْ اَوْ بُيُوتِ اَخَوَاتِكُمْ
اَوْ بُيُوتِ اَعْمَامِكُمْ اَوْ بُيُوتِ عَمَّاتِكُمْ اَوْ بُيُوتِ
اَخْوَالِكُمْ اَوْ بُيُوتِ خَالَاتِكُمْ اَوْ مَا مَلَكْتُمْ
مَفَاتِحَهُٓ اَوْ صَدِيقِكُمْ لَيْسَ عَلَيْكُمْ جُنَاحٌ اَنْ
تَاْكُلُوا جَمِيعًا اَوْ اَشْتَاتًا فَاِذَا دَخَلْتُمْ بُيُوتًا فَسَلِّمُوا
عَلٰٓى اَنْفُسِكُمْ تَحِيَّةً مِنْ عِنْدِ اللّٰهِ مُبَارَكَةً طَيِّبَةً
كَذٰلِكَ يُبَيِّنُ اللّٰهُ لَكُمُ الْاٰيَاتِ لَعَلَّكُمْ تَعْقِلُونَ ﴿٦١﴾

**59**- Dema zarokên we balix bûn, bila ew jî (ji bo werin cem we) destûrê bixwazin, ka çawa yên berî wan destûr xwestine. Her wiha Xwedê Teala ji we re ayetên xwe aşkera dike (ji bo ku hûn rêz û toreya xwe ji wan bigirin û li gorî wan tevbigerin). Xwedê (di kar û barê xwe de) zana ye, karbinecih e.

**60**- Ew jinên ku (ji heyz û zarokan) ketine û wan ji zewacê hêvî biriye, ji wan re tu gunehek tune ye ku ew *cilên li* ser xwe deynin, bêyî ku xişrên xwe nîşan bidin. Dîsa jî eger ew xwe binixumînin ji wan re hê çêtir e. Xwedê Teala bihîzer e, zana ye.

**61**- Li ser ê kor, li ser ê kulek û li ser ê nexweş guneh nîn e (ku ji cîhadê bi paş de bimînin, lewra kiryarên ku ev nikaribin bikin li wan nayêne barkirin). Ji we bi xwe re jî guneh tune ye ku hûn ji malê (zarokên) xwe, yan ji malê bavên xwe, yan ji malê dayîkên xwe, yan ji malê birayên xwe, yan ji malê xwehên xwe, yan ji malê apên xwe, yan ji malê metên xwe, yan ji malê xalên xwe, yan ji malê xaletên xwe, yan ji cihên ku kilîtên wan di destê we de ne (yanî spareyên ku bêheqdest hûn li wan dinêrin) yan jî ji malê dostên xwe bêdestûr bixwin. Ji we re guneh tune ye ku hûn tev bi hev re, yan jî ji hev cuda bixwin. Dema hûn herin malekê (ku tu kes li hundir tune be jî) bi wê silava ku li nik Xwedê pîroz û pak e, silavê li ser xwe bi xwe bidin. Her wiha Xwedê, ji we re ayetên (rêz û qanûnên dînê we) aşkera dike da ku hûn (wan) fehm bikin (û li gorî wan tevbigerin).




إِنَّمَا الْمُؤْمِنُونَ الَّذِينَ اٰمَنُوا بِاللّٰهِ وَرَسُولِهِ وَإِذَا كَانُوا مَعَهُ عَلٰى
اَمْرٍ جَامِعٍ لَمْ يَذْهَبُوا حَتّٰى يَسْتَأْذِنُوهُ اِنَّ الَّذِينَ يَسْتَأْذِنُونَكَ
اُولٰئِكَ الَّذِينَ يُؤْمِنُونَ بِاللّٰهِ وَرَسُولِهِ فَاِذَا اسْتَأْذَنُوكَ لِبَعْضِ
شَأْنِهِمْ فَأْذَنْ لِمَنْ شِئْتَ مِنْهُمْ وَاسْتَغْفِرْ لَهُمُ اللّٰهَ اِنَّ اللّٰهَ غَفُورٌ
رَحِيمٌ ﴿٦٢﴾ لَا تَجْعَلُوا دُعَاءَ الرَّسُولِ بَيْنَكُمْ كَدُعَاءِ بَعْضِكُمْ
بَعْضًا قَدْ يَعْلَمُ اللّٰهُ الَّذِينَ يَتَسَلَّلُونَ مِنْكُمْ لِوَاذًا فَلْيَحْذَرِ الَّذِينَ
يُخَالِفُونَ عَنْ اَمْرِهِ اَنْ تُصِيبَهُمْ فِتْنَةٌ اَوْ يُصِيبَهُمْ عَذَابٌ اَلِيمٌ
﴿٦٣﴾ اَلَا اِنَّ لِلّٰهِ مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ قَدْ يَعْلَمُ مَا اَنْتُمْ عَلَيْهِ
وَيَوْمَ يُرْجَعُونَ اِلَيْهِ فَيُنَبِّئُهُمْ بِمَا عَمِلُوا وَاللّٰهُ بِكُلِّ شَيْءٍ عَلِيمٌ ﴿٦٤﴾

سُورَةُ الْفُرْقَانِ مَكِّيَّةٌ وَهِيَ
سَبْعٌ وَسَبْعُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

تَبَارَكَ الَّذِي نَزَّلَ الْفُرْقَانَ عَلٰى عَبْدِهِ لِيَكُونَ لِلْعَالَمِينَ نَذِيرًا
﴿١﴾ اَلَّذِي لَهُ مُلْكُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَلَمْ يَتَّخِذْ وَلَدًا وَلَمْ يَكُنْ
لَهُ شَرِيكٌ فِي الْمُلْكِ وَخَلَقَ كُلَّ شَيْءٍ فَقَدَّرَهُ تَقْدِيرًا ﴿٢﴾

وَاتَّخَذُوا

**62**- Bêguman bawermendên rast û durist, ew ên ku ji dil û can bi Xwedê û Pêxemberê wî bawerî anîne. Ew dema digel Pêxember di karekî girîng ê civakî de bin, heta ku destûrê jê nexwazin ew naçin. Bêguman ew ên ku ji te destûrê dixwazin; ha ew in ên ku bi rastî bawerî bi Xweda û pêxemberê wî anîne. Nexwe dema ku ew ji bo hin karên xwe destûrê ji te bixwazin, vêca ji wan ê ku tu bivê destûra çûnê bidê. ji Xwedê ji bo wan lêborîna gunehên wan bixwaze. Bêguman Xwedê gunehjêbir e, dilovîn e.

**63**- (Gelî mumînan!) Hûn gazîkirina Pêxember ji bo xwe nekin mîna gazîkirina we ya di navbera xwe de. Bêguman ji nav we Xwedê bi wan kesên ku xwe di ber hev de vedişêrin (û bêdestûrxwestin) hin bi hin dertên, dizane. Vêca bila ew ên ku bi gotina wî nakin bitirsin ku belayek bi ser wan de bê, yan jî ezabekî cansoj îsabetî wan bike.

Ev ayeta pîroz; ji bo bawermendan dersek e, telîmek e ku wan hînî gazîkirina Pêxember dike. Ayet dide zanîn ku lazim e musilman di biwara Pêxember de pir bi heya û tore bin. Dema navê wî yê şêrîn bibêjin divê jê re "Qasidê Xwedê, pêxemberê merhemetê, Resûlullah, Nebî, Mezinê me, Pêxemberê Alîcenab, Alîsifet, û hwd bibêjin. Piştre jî "silav û dirûdên Xwedê li ser bibêjin" (anku bibêjin: sellellah eleyhî we sellem). Bi vî awayî ew rêz û hurmeta xwe ya li biwara pêxember bidin nîşan.

**64**- Agahdar bin, bêguman çi tiştên li erd û asîmanan hene her ew ên Xwedê ne. Bêguman Xwedê ya ku hûn li serê ne û wê roja ku hûn ê tê de li Xweda bên vegerandin dizane. Vêca Xwedê ji ya ku kirin dê wan agahdar bike. Xwedê bi her tiştî zana ye.

## SÛREYÊ FURQAN

Sûreyê Furqan 77 (heftê û heft) ayet e. Li Mekkê daketiye. Ji ber ku di ayeta yekem de bêjeya Furqan derbas bûye ku ew bi mehneya cudakera heqî û batilî ye û navek ji navên Qurana Pîroz e, ji vî sûreyî re Furqan hatiye gotin.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

**1**- Ew Xwedayê ku Furqan (Quran) ji evdê xwe (Muhemmed) re hinartiye da ku ew ji cîhaniyan (însan û cinan) re bibe hişyarker, pak û pîroz û bilind e.

**2**- Ew Xwedayê ku hukimranî û desthilatiya erd û asîmanan her jê re ye, ew ê ku tu zarok ji xwe re negirtiye û ew ê ku di hukimranîya wî de tu şirîk jê re tune ye û her tişt bi pîvan û endaze afirandiye.

وَاتَّخَذُوا مِنْ دُونِهٖٓ اٰلِهَةً لَا يَخْلُقُونَ شَيْـًٔا وَهُمْ يُخْلَقُونَ
وَلَا يَمْلِكُونَ لِاَنْفُسِهِمْ ضَرًّا وَلَا نَفْعًا وَلَا يَمْلِكُونَ
مَوْتًا وَلَا حَيٰوةً وَلَا نُشُورًا ﴿٣﴾ وَقَالَ الَّذٖينَ كَفَرُٓوا اِنْ
هٰذَٓا اِلَّٓا اِفْكٌ افْتَرٰيهُ وَاَعَانَهُ عَلَيْهِ قَوْمٌ اٰخَرُونَ فَقَدْ جَٓاؤُ
ظُلْمًا وَزُورًا ﴿٤﴾ وَقَالُٓوا اَسَاطٖيرُ الْاَوَّلٖينَ اكْتَتَبَهَا فَهِيَ
تُمْلٰى عَلَيْهِ بُكْرَةً وَاَصٖيلًا ﴿٥﴾ قُلْ اَنْزَلَهُ الَّذٖى يَعْلَمُ
السِّرَّ فِى السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ اِنَّهُ كَانَ غَفُورًا رَحٖيمًا ﴿٦﴾
وَقَالُوا مَالِ هٰذَا الرَّسُولِ يَاْكُلُ الطَّعَامَ وَيَمْشٖى فِى
الْاَسْوَاقِ لَوْلَٓا اُنْزِلَ اِلَيْهِ مَلَكٌ فَيَكُونَ مَعَهُ نَذٖيرًا ﴿٧﴾ اَوْ
يُلْقٰٓى اِلَيْهِ كَنْزٌ اَوْ تَكُونُ لَهُ جَنَّةٌ يَاْكُلُ مِنْهَا وَقَالَ
الظَّالِمُونَ اِنْ تَتَّبِعُونَ اِلَّا رَجُلًا مَسْحُورًا ﴿٨﴾ اُنْظُرْ كَيْفَ
ضَرَبُوا لَكَ الْاَمْثَالَ فَضَلُّوا فَلَا يَسْتَطٖيعُونَ سَبٖيلًا ﴿٩﴾ تَبَارَكَ
الَّذٖٓى اِنْ شَٓاءَ جَعَلَ لَكَ خَيْرًا مِنْ ذٰلِكَ جَنَّاتٍ تَجْرٖى مِنْ
تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ وَيَجْعَلْ لَكَ قُصُورًا ﴿١٠﴾ بَلْ كَذَّبُوا
بِالسَّاعَةِ وَاَعْتَدْنَا لِمَنْ كَذَّبَ بِالسَّاعَةِ سَعٖيرًا ﴿١١﴾

**3**- (Ew ên ku muşrik in) ji bilî Xwedê Teala hin mabûd girtine ku ew nikarin tiştekî bixuliqînin û ew bi xwe hatine xuliqandin. Ew ne dikarin tu zerarê ji ser xwe bidin alî ne jî feydeyekê bidin xwe. Ew nedikarin tu kesî bimirînin û ne jî sax bikin û ew nikarin tu kesî piştî mirinê dîsa vejînin.

**4**- Ew ên kafir bûne gotin: Ev (Quran) ji dereweke pê ve nîn e ku Muhemmed ew ji cem xwe ve lêaniye, der barê lêanîna wê de qewmekî din jî arikariya wî kiriye. Vêca bêguman wan kafiran (bi vê gotina xwe) zilm û derew kiriye...

**5**- Gotin: (Ev Quran) çîrok û çîvanokên pêşiyan e ku Muhemmed ew bi nivîsyarekî dane nivîsandin. Vêca ew sibeh û êvarê ji Muhemmed re têne xwendin.

**6**- Bibêje: Ew Xwedayê ku sir û raza erd û asîmanan dizane ev Quran (ji min re) şandiye. Bêguman ew gunehjêbir e, dilovîn e.

**7**- Gotin: Ev çi pêxember e ku (ew jî wekî me) xwarinê dixwe û li sûkan digere! De bila firîşteyek ji bo wî bihata xwarê da ku pê re bibûya hişyarkerek (û ew rast bidêraya)?

**8**- Yan ji bo wî (ji esmên) gencîneyek hatibûya xwarê, yan jî jê re baxçeyek hebûya ku jê bixwara (da ku ferqeke wî ji me hebûya). Wan zaliman (ji bawermendan re) got: Bes we daye pey zilamekî sêrlêbûyî!

**9**- (Resûlê min!) De bimêzîne ka çawa der barê te de derb û mesel anîne. Vêca ew ji rê ketine û êdî (ji bo hîdayetbûna xwe) ew ê riyekê nebînin.

**10**- Xweda pak û pîroz û bilind e. Ew ê ku ew bivê dê yên ku ji van hê çêtir ku ew bihişt in û di binê wan de çem diherikin bide te û ew ê koşk û qesran jî bide te.

**11**- Nexêr ne wisan e, belkî wan bawerî bi roja qiyametê neanîbû. Bêguman me jî ji bo wan kesên ku bawerî bi qiyametê neaniye agirekî bi pêt amade kiriye.

اِذَا رَاَتْهُمْ مِنْ مَكَانٍ بَعٖيدٍ سَمِعُوا لَهَا تَغَيُّظًا وَزَفٖيرًا ﴿١٢﴾
وَاِذَٓا اُلْقُوا مِنْهَا مَكَانًا ضَيِّقًا مُقَرَّنٖينَ دَعَوْا هُنَالِكَ ثُبُورًاؕ ﴿١٣﴾
لَا تَدْعُوا الْيَوْمَ ثُبُورًا وَاحِدًا وَادْعُوا ثُبُورًا كَثٖيرًا ﴿١٤﴾
قُلْ اَذٰلِكَ خَيْرٌ اَمْ جَنَّةُ الْخُلْدِ الَّتٖى وُعِدَ الْمُتَّقُونَؕ كَانَتْ
لَهُمْ جَزَٓاءً وَمَصٖيرًا ﴿١٥﴾ لَهُمْ فٖيهَا مَا يَشَٓاؤُ۫نَ خَالِدٖينَؕ
كَانَ عَلٰى رَبِّكَ وَعْدًا مَسْؤُلًا ﴿١٦﴾ وَيَوْمَ يَحْشُرُهُمْ وَمَا
يَعْبُدُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ فَيَقُولُ ءَاَنْتُمْ اَضْلَلْتُمْ عِبَادٖى
هٰٓؤُلَٓاءِ اَمْ هُمْ ضَلُّوا السَّبٖيلَؕ ﴿١٧﴾ قَالُوا سُبْحَانَكَ مَا كَانَ
يَنْبَغٖى لَنَٓا اَنْ نَتَّخِذَ مِنْ دُونِكَ مِنْ اَوْلِيَٓاءَ وَلٰكِنْ
مَتَّعْتَهُمْ وَاٰبَٓاءَهُمْ حَتّٰى نَسُوا الذِّكْرَۚ وَكَانُوا قَوْمًا
بُورًا ﴿١٨﴾ فَقَدْ كَذَّبُوكُمْ بِمَا تَقُولُونَۙ فَمَا تَسْتَطٖيعُونَ
صَرْفًا وَلَا نَصْرًاۚ وَمَنْ يَظْلِمْ مِنْكُمْ نُذِقْهُ عَذَابًا
كَبٖيرًا ﴿١٩﴾ وَمَٓا اَرْسَلْنَا قَبْلَكَ مِنَ الْمُرْسَلٖينَ اِلَّٓا اِنَّهُمْ
لَيَاْكُلُونَ الطَّعَامَ وَيَمْشُونَ فِى الْاَسْوَاقِؕ وَجَعَلْنَا
بَعْضَكُمْ لِبَعْضٍ فِتْنَةًؕ اَتَصْبِرُونَۚ وَكَانَ رَبُّكَ بَصٖيرًا ﴿٢٠﴾

وَقَالَ

**12**- Dema ku cehenem ji mesafeyeke dûr ve wan dibîne, ew guregur û fizîniya wê hê ji dûr ve dibihîzin.

**13**- Dema ku destên wan bi stûyê wan ve girêdayî, di dojehê de li cihekî teng bêne werkirin, li wê derê mirina xwe dixwazin (da ku ji ezab xelas bibin).

**14**- (Ji wan re dê bê gotin:) Îro ne bes carekê mirina xwe bixwazin, gelek caran bixwazin (lê xwestina we dê hîç feydeyê nede we).

**15**- (Ji wan re) Bibêje: Erê ma ev (dojeh) çêtir e yan ew bihişta seraqetî ya ku teqwadar pê hatine sozdayîn ku ew ji bo wan her padaş û war e?

**16**- Ji bo teqwadaran li bihiştê ya ew dixwazin ji wan re heye, ew li wir daîmî ne, ev peymaneke misoger e li ser Xwadayê te ku mafdar jê dixwazin.

**17**- Wê rojê Xweda dê wan û wan mabûdên ku ji bilî wî perestina wan dikirin, bîne cem hev û (ji mabûdan re dê) bibêje: Erê ma we ev bendeyên min ji rê xistin an ew bi xwe ji rê ketine?

**18**- Ew mabûd dibêjin: Em ji karê ku wan kirî te pak didêrin. Ne hedê me ye ku ji bilî te em dost û arîkaran ji xwe re bigirin, (vêca em ê çawa bibêjin bila xelk perestina me bikin). Lê belê te ew qas nimet li wan û bavên wan kirin heta ku wan tu ji bîr kir û ew bûne qewmekî ku wan helak heq kir.

**19**- (Ji muşrikan re tê gotin:) Bi rastî ew ên ku we perestina wan dikir, di gotina we de hûn derewîn derxistin. Vêca hûn ne dikarin ezab ji xwe vegerînin ne jî dikarin arîkariyekê ji xwe re bikin. Ji nav we, kî zilmê (şirkê) bike em ê ezabekî mezin (û dijwar) bi wî bidin çêjandin!

**20**- (Ya Muhemmed!) Me beriya te her çiqas pêxemberek şandibe, her wan xwarin dixwar û li sûkan dimeşiyan. Me hin ji we ji hinan re kirine îmtîhan û ceribandin, ka hûn ê xwe ragirin (yan na). Xwedayê te her bîner e.

Ev ayeta pîroz hedan/teseliya xweybaweran tîne, şîretê li wan dike ku li hemberî zordarên muşrik xwe ragirin. Ayet destnîşan dike ku sebirkêşî û sitembariya wan dê bêxelat nemîne û zulma muşrikan jî bêceza dê nemîne.

وَقَالَ الَّذِينَ لَا يَرْجُونَ لِقَاءَنَا لَوْلَا أُنْزِلَ عَلَيْنَا الْمَلٰئِكَةُ
اَوْ نَرٰى رَبَّنَا لَقَدِ اسْتَكْبَرُوا فِى اَنْفُسِهِمْ وَعَتَوْ عُتُوًّا كَبِيرًا
﴿٢١﴾ يَوْمَ يَرَوْنَ الْمَلٰئِكَةَ لَا بُشْرٰى يَوْمَئِذٍ لِلْمُجْرِمِينَ وَيَقُولُونَ
حِجْرًا مَحْجُورًا ﴿٢٢﴾ وَقَدِمْنَا اِلٰى مَا عَمِلُوا مِنْ عَمَلٍ فَجَعَلْنَاهُ
هَبَاءً مَنْثُورًا ﴿٢٣﴾ اَصْحَابُ الْجَنَّةِ يَوْمَئِذٍ خَيْرٌ مُسْتَقَرًّا وَاَحْسَنُ
مَقِيلًا ﴿٢٤﴾ وَيَوْمَ تَشَقَّقُ السَّمَاءُ بِالْغَمَامِ وَنُزِّلَ الْمَلٰئِكَةُ تَنْزِيلًا
﴿٢٥﴾ اَلْمُلْكُ يَوْمَئِذٍ الْحَقُّ لِلرَّحْمٰنِ وَكَانَ يَوْمًا عَلَى الْكَافِرِينَ
عَسِيرًا ﴿٢٦﴾ وَيَوْمَ يَعَضُّ الظَّالِمُ عَلٰى يَدَيْهِ يَقُولُ يَا لَيْتَنِى
اتَّخَذْتُ مَعَ الرَّسُولِ سَبِيلًا ﴿٢٧﴾ يَا وَيْلَتٰى لَيْتَنِى لَمْ اَتَّخِذْ
فُلَانًا خَلِيلًا ﴿٢٨﴾ لَقَدْ اَضَلَّنِى عَنِ الذِّكْرِ بَعْدَ اِذْ جَاءَنِى
وَكَانَ الشَّيْطَانُ لِلْاِنْسَانِ خَذُولًا ﴿٢٩﴾ وَقَالَ الرَّسُولُ
يَا رَبِّ اِنَّ قَوْمِى اتَّخَذُوا هٰذَا الْقُرْاٰنَ مَهْجُورًا ﴿٣٠﴾ وَكَذٰلِكَ
جَعَلْنَا لِكُلِّ نَبِىٍّ عَدُوًّا مِنَ الْمُجْرِمِينَ وَكَفٰى بِرَبِّكَ هَادِيًا
وَنَصِيرًا ﴿٣١﴾ وَقَالَ الَّذِينَ كَفَرُوا لَوْلَا نُزِّلَ عَلَيْهِ الْقُرْاٰنُ جُمْلَةً
وَاحِدَةً كَذٰلِكَ لِنُثَبِّتَ بِهِ فُؤَادَكَ وَرَتَّلْنَاهُ تَرْتِيلًا ﴿٣٢﴾

21- Ewên ku tu hêviyê ji me nakin, gotin: De bila firîşte ji bo me hatibûna xwarê yan jî de bila me aşkera Xwedayê xwe bidîtaya (ku bigota Muhemmed pêxemberê min e). Sond be, wan di nefsa xwe de xwe mezin dêra û bi pozbilindiyeke mezin ji hedê xwe derketin.

22- Wê roja ku (muşrik) firîşteyan dibînin, wê rojê ji gunehkaran re tu mizgîniya xêrê tune ye û firîşte ji wan re dibêjin: (Bihişt û dilşadî ji bo we) heram e û heramkirî ye!

23- Em kar û kiryarên ku wan kirin tînin û em mîna tozê wê li ber ba dixin

Ev ayeta pîroz dide zanîn ku tiştên rind ên ku kafiran kiriye û yên ku bikin, wek numûne; Xwedîkirina mêvanan, serdana xizman, dana sedeqeyan û çûna bi hawara feqîran ve ji bo ku bawerî neanîne tu feydê ji wan nabînin. Lewra wan ew ne ji bo Xwedê kiriye belkî; ji bo hin tiştên din kirine.

24- Wê rojê ehlê bihiştê di çêtirîn cihan de û di baştirîn îstîrahetgehan de ne.

25- Wê rojê asîman digel ewrên spî şeq dibe û firîşte bi hatineke bêjimar têne xwarê.

26- Ha wê rojê hukimraniya serdest a rasteqîne ji Xwedayê rehman re ye. Ew roj ji bo kafiran rojeke dijwar e.

27- Wê rojê yê zalim dê her du destên xwe gez bike û wê bibêje: Xwezîka min ligel Pêxember ji xwe re riyek bigirta!

28- Wax li halê min be! Xwezî min filankes ji xwe re nekira dost!

29- Sond be, piştî ku Quran ji me re hat wî ez xirandim û jê dame paş. Şeytan ji bo însanan her rezîlker e.

30- Pêxember got: Xwedayê min! Gelê min Quran terk kir û pê emel nekir.

31- Her wisa em ji her pêxemberekî re ji gunehkaran dijminekî peyda dikin û rêbertiya Xwedayê te ji hêla rêberî û arîkarî ve besî te ye.

32- Ewên ku kafir bûne gotin: De bila Quran bi yek carê, bi neqlekê ji Muhemmed re bihata hinartin. Me wisa ew hinart da ku em dilê te pê mikûm bikin û me ew li dû hev, jiheveqetandî da xwendin.

وَلَا يَأْتُونَكَ بِمَثَلٍ اِلَّا جِئْنَاكَ بِالْحَقِّ وَاَحْسَنَ تَفْس۪يرًاۜ ﴿٣٣﴾
اَلَّذ۪ينَ يُحْشَرُونَ عَلٰى وُجُوهِهِمْ اِلٰى جَهَنَّمَۙ اُو۬لٰٓئِكَ شَرٌّ
مَكَانًا وَاَضَلُّ سَب۪يلًا ﴿٣٤﴾ وَلَقَدْ اٰتَيْنَا مُوسَى الْكِتَابَ
وَجَعَلْنَا مَعَهُٓ اَخَاهُ هٰرُونَ وَز۪يرًاۚ ﴿٣٥﴾ فَقُلْنَا اذْهَبَٓا اِلَى
الْقَوْمِ الَّذ۪ينَ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَاۜ فَدَمَّرْنَاهُمْ تَدْم۪يرًاۜ ﴿٣٦﴾
وَقَوْمَ نُوحٍ لَمَّا كَذَّبُوا الرُّسُلَ اَغْرَقْنَاهُمْ وَجَعَلْنَاهُمْ
لِلنَّاسِ اٰيَةًۜ وَاَعْتَدْنَا لِلظَّالِم۪ينَ عَذَابًا اَل۪يمًاۚ ﴿٣٧﴾ وَعَادًا
وَثَمُودَا۬ وَاَصْحَابَ الرَّسِّ وَقُرُونًا بَيْنَ ذٰلِكَ كَث۪يرًا ﴿٣٨﴾
وَكُلًّا ضَرَبْنَا لَهُ الْاَمْثَالَۘ وَكُلًّا تَبَّرْنَا تَتْب۪يرًا ﴿٣٩﴾ وَلَقَدْ اَتَوْا
عَلَى الْقَرْيَةِ الَّت۪ٓي اُمْطِرَتْ مَطَرَ السَّوْءِۜ اَفَلَمْ يَكُونُوا
يَرَوْنَهَاۚ بَلْ كَانُوا لَا يَرْجُونَ نُشُورًا ﴿٤٠﴾ وَاِذَا رَاَوْكَ
اِنْ يَتَّخِذُونَكَ اِلَّا هُزُوًاۜ اَهٰذَا الَّذ۪ي بَعَثَ اللّٰهُ رَسُولًا ﴿٤١﴾
اِنْ كَادَ لَيُضِلُّنَا عَنْ اٰلِهَتِنَا لَوْلَٓا اَنْ صَبَرْنَا عَلَيْهَاۜ وَسَوْفَ
يَعْلَمُونَ ح۪ينَ يَرَوْنَ الْعَذَابَ مَنْ اَضَلُّ سَب۪يلًا ﴿٤٢﴾ اَرَاَيْتَ
مَنِ اتَّخَذَ اِلٰهَهُ هَوٰيهُۜ اَفَاَنْتَ تَكُونُ عَلَيْهِ وَك۪يلًاۙ ﴿٤٣﴾

اَمْ تَحْسَبُ

**33**- (Ya Muhemmed!) Ew çiqas meseleyekê li hemberê te bînin (da ku doza te pûç bikin), em her a rasttirîn û (ji bo wê) raveyeke/tefsîreke spehîtir ji te re tînin.

**34**- Ew ên ku li ser rûyên xwe ber bi dojehê ve têne ajotin, ha ew pîstirîn xwedancih in û şaştirîn xwedanrêk in.

**35**- Sond be, me Tewrat daye Mûsa û me birayê wî Harûn jî ji bo wî kire wezîr û arîkar.

**36**- Me ji wan re got: Herin bal wî qewmê ku bi ayetên me bawerî neanîn, vêca (piştî ku ew çûn û wan bawerî neanî) me ew ji binî ve qir kirin.

**37**- Qewmê Nûh, çi dema ku wan bawerî bi pêxemberan neanî, me ew jî bi Tofanê xeniqandin û me ew ji bo mirovan kirin îbret û Me ji bo zaliman (li axîretê) ezabekî cansoj amade kiriye.

**38**- Me Ad (ê qewmê Hûd), Semûd (ê qewmê Salih), xelkê Ressê û gelek miletên ku di navbera van de jî (birin helakê).

**39**- Me ji her yekî ji wan re ayet û delîl anîn, (lê belê ji ber ku wan bawerî neanî) me tevek birin helakê.

**40**- Sond be, ew (pûtperest) di ber wî welatê ku barana karesat û belaya pîs lê bariyaye derbas bûne. Erê ma wan ew jî nedît (ku jê îbret bigirin). Na, ne rast e, belkî ew bi saxbûna piştî mirinê bawerî nayînin.

Ew welatê ku barana felaket û belaya pîs lê bariyaye Sedoma welatê gelê Lût pêxember e, balaya pîs jî kevir in ku ji ber kirina wan a kirêt li wan barîne. Xwedê bi îbret ew ji navê birine nemanê. Muşrikên Qureyşî jî gava ji bo bazirganiyê diçûne sefera Şamê di wî welatî re derbas bûne, encama xirab a ku hatiye serê înkarkeran bi çavê serê xwe dîtine û dîsa jî îbret negirtine û nehatine îmanê.

**41**- (Ya Muhemmed!) Dema ku ew te dibînin ew her henekên xwe bi te dikin (û dibêjin:) Ma ew ê ku Xwedê bi pêxemberî (ji me re) şandiye ev e?

**42**- (Ew ji hev re dibêjin:) Eger me li ser hebandina mabûdên xwe sebat nekira, hindik dima ku wî em ji riya îlahên me bixiranda. Paşê dema ew ezab bibînin, ew dê bizanin ka kî rêşaştir e!

**43**- (Ya Muhemmed!) Erê ma te ew kesê ku hewesa xwe ji xwe re kiriye îlah nedîtiye, erê ma vêca tu dê bibî kefîlê-wî?

اَمْ تَحْسَبُ اَنَّ اَكْثَرَهُمْ يَسْمَعُونَ اَوْ يَعْقِلُونَ اِنْ هُمْ
اِلَّا كَالْاَنْعَامِ بَلْ هُمْ اَضَلُّ سَبِيلًا ﴿٤٤﴾ اَلَمْ تَرَ اِلٰى رَبِّكَ
كَيْفَ مَدَّ الظِّلَّ وَلَوْ شَاءَ لَجَعَلَهُ سَاكِنًا ثُمَّ جَعَلْنَا الشَّمْسَ
عَلَيْهِ دَلِيلًا ﴿٤٥﴾ ثُمَّ قَبَضْنَاهُ اِلَيْنَا قَبْضًا يَسِيرًا ﴿٤٦﴾ وَهُوَ الَّذٖى
جَعَلَ لَكُمُ الَّيْلَ لِبَاسًا وَالنَّوْمَ سُبَاتًا وَجَعَلَ النَّهَارَ نُشُورًا
﴿٤٧﴾ وَهُوَ الَّذٖى اَرْسَلَ الرِّيَاحَ بُشْرًا بَيْنَ يَدَىْ رَحْمَتِهٖ وَاَنْزَلْنَا
مِنَ السَّمَاءِ مَاءً طَهُورًا ﴿٤٨﴾ لِنُحْيِىَ بِهٖ بَلْدَةً مَيْتًا وَنُسْقِيَهُ
مِمَّا خَلَقْنَا اَنْعَامًا وَاَنَاسِىَّ كَثٖيرًا ﴿٤٩﴾ وَلَقَدْ صَرَّفْنَاهُ بَيْنَهُمْ
لِيَذَّكَّرُوا فَاَبٰى اَكْثَرُ النَّاسِ اِلَّا كُفُورًا ﴿٥٠﴾ وَلَوْ شِئْنَا لَبَعَثْنَا
فٖى كُلِّ قَرْيَةٍ نَذٖيرًا ﴿٥١﴾ فَلَا تُطِعِ الْكَافِرٖينَ وَجَاهِدْهُمْ بِهٖ
جِهَادًا كَبٖيرًا ﴿٥٢﴾ وَهُوَ الَّذٖى مَرَجَ الْبَحْرَيْنِ هٰذَا عَذْبٌ فُرَاتٌ
وَهٰذَا مِلْحٌ اُجَاجٌ وَجَعَلَ بَيْنَهُمَا بَرْزَخًا وَحِجْرًا مَحْجُورًا
﴿٥٣﴾ وَهُوَ الَّذٖى خَلَقَ مِنَ الْمَاءِ بَشَرًا فَجَعَلَهُ نَسَبًا وَصِهْرًا
وَكَانَ رَبُّكَ قَدٖيرًا ﴿٥٤﴾ وَيَعْبُدُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ مَا
لَا يَنْفَعُهُمْ وَلَا يَضُرُّهُمْ وَكَانَ الْكَافِرُ عَلٰى رَبِّهٖ ظَهٖيرًا ﴿٥٥﴾

**44**- Yan jî, ma ji te we ye ku pirên wan (ya ku tu ji wan re dibêjî) seh dikin an jî fehm dikin? Ew bes mîna dewaran in, belkî ji dewaran jî rêşaştir in.

Ev bêhêvîbûna ji îmananîna wan e. Ji bo Pêxember (s) jî îşaretek e ku li ser wan xemgîn nebe û dazanînek e ku ew berjewendiyên xwe nizanin û ew mîna heywanan in ku li encama karên xwe nafikirin.

**45**- Ma tu nanêrî ku Xwedayê te çawa sî dirêj kiriye? Eger bixwesta teqez dê ew nelebitanda. Piştre me roj jî li ser hebûna wê kire nîşan (ku eger roj nebûya dê sî nehata zanîn).

**46**- Paşê me ew sî hêdî hêdî bi bal xwe ve kişand.

**47**- (Gelî mirovan!) Xwedê Teala ye, yê ku şev ji we re kiriye stargeh û xew jî kiriye tenahî û ro jî kiriye vejîn ji bo kar û xebatê.

**48**- Xwedê Teala ye, yê ku berî rehmeta xwe bibarîne bi mizgîndêrî bayê dişîne û Me ji ewran baraneke paqijker barand.

**49**- Da ku em welatekî hişkemirî pê vejînin û hinek ji wan heywanên ku me ew afirandine û gelek însanan jî pê av bidin.

**50**- Sond be, me ew baran di nav welatan de belav kir da ku Xwedayê xwe di bîr bînin. Vêca pirên mirovan li ber wê asê bûn û wan her nankorî kir.

**51**- Eger me bixwesta helbet me dê ji her bajarekî re (pêxemberekî) hişyarker bişanda, (lê belê ji bo hişyarkeriyê me tu bijart).

**52**- Vêca bi gotina kafiran meke û bi Quranê li hemberî wan cîhadeke mezin bike!

**53**- Xwedê Teala ye, yê ku du derya di kêleka hev de, wan ji wan re berdide. Ev a ha şêrînek e ku tîbûnê radike û ev a ha jî şorek e ku tîbûnê zêde dike. Di navbera wan de navbirek heye ku ew tevîhev nabin.

**54**- Xwedê ye, yê ku ji avê însan xuliqandiye û ew kiriye xwedanneseb û xwedanxizmî. Teqez Xwedayê te qadirê her tiştî ye.

**55**- Ew (kafir) ji bilî Xwedê Teala perestina hin pûtên wisa dikin ku ew ne dikarin feydê bidin wan ne jî dikarin zerarê bidin wan. Mirovê kafir li hemberî Xwedayê xwe her (ji pelîd re piştek û) arîkar e.

وَمَٓا اَرْسَلْنَاكَ اِلَّا مُبَشِّرًا وَنَذٖيرًا ﴿٥٦﴾ قُلْ مَٓا اَسْـَٔلُكُمْ
عَلَيْهِ مِنْ اَجْرٍ اِلَّا مَنْ شَٓاءَ اَنْ يَتَّخِذَ اِلٰى رَبِّهٖ سَبٖيلًا ﴿٥٧﴾
وَتَوَكَّلْ عَلَى الْحَيِّ الَّذٖى لَا يَمُوتُ وَسَبِّحْ بِحَمْدِهٖ وَكَفٰى بِهٖ
بِذُنُوبِ عِبَادِهٖ خَبٖيرًا ﴿٥٨﴾ اَلَّذٖى خَلَقَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ
وَمَا بَيْنَهُمَا فٖى سِتَّةِ اَيَّامٍ ثُمَّ اسْتَوٰى عَلَى الْعَرْشِ اَلرَّحْمٰنُ
فَسْـَٔلْ بِهٖ خَبٖيرًا ﴿٥٩﴾ وَاِذَا قٖيلَ لَهُمُ اسْجُدُوا لِلرَّحْمٰنِ قَالُوا (سجده)
وَمَا الرَّحْمٰنُ اَنَسْجُدُ لِمَا تَاْمُرُنَا وَزَادَهُمْ نُفُورًا ﴿٦٠﴾ تَبَارَكَ
الَّذٖى جَعَلَ فِى السَّمَٓاءِ بُرُوجًا وَجَعَلَ فٖيهَا سِرَاجًا وَقَمَرًا مُنٖيرًا
﴿٦١﴾ وَهُوَ الَّذٖى جَعَلَ الَّيْلَ وَالنَّهَارَ خِلْفَةً لِمَنْ اَرَادَ اَنْ
يَذَّكَّرَ اَوْ اَرَادَ شُكُورًا ﴿٦٢﴾ وَعِبَادُ الرَّحْمٰنِ الَّذٖينَ
يَمْشُونَ عَلَى الْاَرْضِ هَوْنًا وَاِذَا خَاطَبَهُمُ الْجَاهِلُونَ قَالُوا
سَلَامًا ﴿٦٣﴾ وَالَّذٖينَ يَبٖيتُونَ لِرَبِّهِمْ سُجَّدًا وَقِيَامًا ﴿٦٤﴾ وَالَّذٖينَ
يَقُولُونَ رَبَّنَا اصْرِفْ عَنَّا عَذَابَ جَهَنَّمَ اِنَّ عَذَابَهَا كَانَ
غَرَامًا ﴿٦٥﴾ اِنَّهَا سَٓاءَتْ مُسْتَقَرًّا وَمُقَامًا ﴿٦٦﴾ وَالَّذٖينَ اِذَٓا اَنْفَقُوا
لَمْ يُسْرِفُوا وَلَمْ يَقْتُرُوا وَكَانَ بَيْنَ ذٰلِكَ قَوَامًا ﴿٦٧﴾

وَالَّذٖينَ

**56**- (Ya Muhemmed!) Me tu bes bi mizgînberî û hişyarkerî şandiye.

**57**- (Ji wan re) Bibêje: Ez, beranberî vê (teblîxa xwe) tu heqdestekê ji we naxwazim. Lê belê ew kesê ku bivê bi bal Xwedayê xwe ve riyekê bigire (û di riya wî de ji bo rizaya wî malê xwe bide) ew cuda ye.

**58**- Tu xwe bispêre wî Xwedayê her sax ê ku hîç namire. Digel pesindayînê ji her kêmasiyê wî pak bidêre. Xwedê Teala, bi gunehên bendeyên xwe ji agahdarî ve bes e.

Wezîfeya te ew e ku tu heqiyê ji bo wan eşkere bikî, ne ku bi zorê wan bênî îmanê yan jî nobetê li ber emelê wan bigrî da ku gunehan nekin, ev karê Xwedê ye, ne yê te ye.

**59**- Xwedê Teala ye, yê ku erd û asîmanan û yên ku di navbera wan de hene di şeş rojan de afirandine. Paşê Xwedayê rehman li ser erşê hukimraniyê rûnişt (rûniştinek babetî wî, bêşekil û bêawa). Vêca der heqê wî de her jê pirsê bike ku ew agahdarê bi her tiştî ye.

**60**- Dema ji wan re bê gotin: Ji Xwedayê rehman re herin sicûdê, dibêjin: Ma Xwedayê rehman kî ye? Qey em ê ji bo yê ku tu fermana me pê dikî biçin sicûdê! Ev gaziya we nefreta wan zêde dike (û wan ji Xweda dûr dike).

**61**- Ew Xwedayê ku li esmanan (ji bo stêrên geroke) rêgeh çêkirin û tê de roj û heyveke ronak danîn, pîroz û xwedankerem e.

**62**- Xwedê ye, yê ku şev û roj ji hev re kirine şûngir, ji bo wan kesê ku bixwaze (kerem û qenciya Xweda) bîne bîra xwe, yan jî bixwaze şêkiriya wî bike.

**63**- Bendeyên rehmanî, ew ên ku li ser erdê bi nefsbiçûkî bi rê ve diçin û dema ku mirovên nezan bi wan re dipeyivin (hîç wan naêşînin û) dibêjin: Silav li we be (û ji wan derbas dibin)...

**64**- Ewên ku ji Xwedayê xwe re şevê li piyan in û secde dibin...

**65**- Ewên ku dibêjin: Xwedayê me! Ezabê dojehê ji ser me bide alî. Bêguman ezabê wê lazim û daîmî ye.

**66**- Bêguman ew der çi pîsecih û wargeh e!

**67**- Ewên ku dema xerc dikin, destbelavî û destengiyê nakin û di nava her duyan de riyeke navîn digirin.

وَالَّذٖينَ لَا يَدْعُونَ مَعَ اللّٰهِ اِلٰهًا اٰخَرَ وَلَا يَقْتُلُونَ النَّفْسَ الَّتٖى
حَرَّمَ اللّٰهُ اِلَّا بِالْحَقِّ وَلَا يَزْنُونَ وَمَنْ يَفْعَلْ ذٰلِكَ يَلْقَ اَثَامًا
﴿٦٨﴾ يُضَاعَفْ لَهُ الْعَذَابُ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ وَيَخْلُدْ فٖيهٖ مُهَانًا ﴿٦٩﴾
اِلَّا مَنْ تَابَ وَاٰمَنَ وَعَمِلَ عَمَلًا صَالِحًا فَاُو۬لٰٓئِكَ يُبَدِّلُ اللّٰهُ
سَيِّـَٔاتِهِمْ حَسَنَاتٍ وَكَانَ اللّٰهُ غَفُورًا رَحٖيمًا ﴿٧٠﴾ وَمَنْ تَابَ
وَعَمِلَ صَالِحًا فَاِنَّهُ يَتُوبُ اِلَى اللّٰهِ مَتَابًا ﴿٧١﴾ وَالَّذٖينَ
لَا يَشْهَدُونَ الزُّورَ وَاِذَا مَرُّوا بِاللَّغْوِ مَرُّوا كِرَامًا ﴿٧٢﴾ وَالَّذٖينَ
اِذَا ذُكِّرُوا بِاٰيَاتِ رَبِّهِمْ لَمْ يَخِرُّوا عَلَيْهَا صُمًّا وَعُمْيَانًا ﴿٧٣﴾
وَالَّذٖينَ يَقُولُونَ رَبَّنَا هَبْ لَنَا مِنْ اَزْوَاجِنَا وَذُرِّيَّاتِنَا
قُرَّةَ اَعْيُنٍ وَاجْعَلْنَا لِلْمُتَّقٖينَ اِمَامًا ﴿٧٤﴾ اُو۬لٰٓئِكَ يُجْزَوْنَ
الْغُرْفَةَ بِمَا صَبَرُوا وَيُلَقَّوْنَ فٖيهَا تَحِيَّةً وَسَلَامًا ﴿٧٥﴾
خَالِدٖينَ فٖيهَا حَسُنَتْ مُسْتَقَرًّا وَمُقَامًا ﴿٧٦﴾ قُلْ مَا يَعْبَؤُا بِكُمْ
رَبّٖى لَوْلَا دُعَاؤُكُمْ فَقَدْ كَذَّبْتُمْ فَسَوْفَ يَكُونُ لِزَامًا ﴿٧٧﴾

سُورَةُ الشُّعَرَاءِ مَكِّيَّةٌ وَهِىَ
مِائَتَانِ وَسَبْعٌ وَعِشْرُونَ اٰيَةً

**68**- Ewên ku digel Xwedê Teala îbadetê me'bûdekî din nakin û bi neheqî ew canê ku Xwedê Teala (kuştina) wî heram kiriye nakujin û zinayê nakin. Kî van bike dê ceza bibîne.

**69**- Roja qiyametê ezabê wî dê qat bi qat zêde bibe û bi şerpezeyî her û her dê tê de bimîne.

**70**- Ji bilî wî kesê ku tobe bike, bawerî bîne û karekî qenc bike, vêca ha ew, Xwedê Teala gunehên wan bi xêran tebdîl dike. Xwedê gunehjêbir e, dilovîn e.

**71**- Çi kesê ku ji gunehan tobe bike û kar û kiryarên qenc bike, bêguman ew ê bi tobeyeke meqbûl li Xwedê vegere.

**72**- Ewên ku şahdezoriyê nadin û dema di ber kirêtî û kelevajiyê re derbas dibin, bi ciwanmêrî têkil nabin.

**73**- Ewên ku dema bi ayetên Xwedayê xwe têne pend û şîretkirin mîna ku ew ker û kor bin, jê xafil namînin.

**74**- Ewên ku dibêjin, Xwedayê me! Ji jin û zarokên me tiştê ku çavê me pê ronahî bibe bide me û me ji teqwadaran re bike pêşeng û rêber!

**75**- Ha ew (bendeyên rehmanî), bi sebunet sebra ku kêşane dê bi bihiştaherî bilind bêne xelatkirin û dê bi bixêrhatin û silava (firîşteyan) bêne pêşwazîkirin.

**76**- Ew tê de seraqetî û ebedî ne, ew xweş niştecih û rindlêmayîn e!

**77**- (Ji wan re) Bibêje: Eger ne ji dua û îbadetê we be, Xwedayê min dê çi ji we bike?! Vêca we bawerî neanî, îcar ezab dê li ser we misoger bibe.

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ

طٰسٓمٓ ﴿١﴾ تِلْكَ اٰيَاتُ الْكِتَابِ الْمُب۪ينِ ﴿٢﴾ لَعَلَّكَ بَاخِعٌ نَفْسَكَ
اَلَّا يَكُونُوا مُؤْمِن۪ينَ ﴿٣﴾ اِنْ نَشَأْ نُنَزِّلْ عَلَيْهِمْ مِنَ السَّمَٓاءِ اٰيَةً
فَظَلَّتْ اَعْنَاقُهُمْ لَهَا خَاضِع۪ينَ ﴿٤﴾ وَمَا يَأْت۪يهِمْ مِنْ ذِكْرٍ مِنَ الرَّحْمٰنِ
مُحْدَثٍ اِلَّا كَانُوا عَنْهُ مُعْرِض۪ينَ ﴿٥﴾ فَقَدْ كَذَّبُوا فَسَيَأْت۪يهِمْ اَنْبٰٓؤُا
مَا كَانُوا بِه۪ يَسْتَهْزِؤُ۫نَ ﴿٦﴾ اَوَلَمْ يَرَوْا اِلَى الْاَرْضِ كَمْ اَنْبَتْنَا ف۪يهَا
مِنْ كُلِّ زَوْجٍ كَر۪يمٍ ﴿٧﴾ اِنَّ ف۪ي ذٰلِكَ لَاٰيَةًۜ وَمَا كَانَ اَكْثَرُهُمْ
مُؤْمِن۪ينَ ﴿٨﴾ وَاِنَّ رَبَّكَ لَهُوَ الْعَز۪يزُ الرَّح۪يمُ ﴿٩﴾ وَاِذْ نَادٰى رَبُّكَ
مُوسٰٓى اَنِ ائْتِ الْقَوْمَ الظَّالِم۪ينَ ﴿١٠﴾ قَوْمَ فِرْعَوْنَ اَلَا يَتَّقُونَ ﴿١١﴾
قَالَ رَبِّ اِنّ۪ٓي اَخَافُ اَنْ يُكَذِّبُونِ ﴿١٢﴾ وَيَض۪يقُ صَدْر۪ي وَلَا يَنْطَلِقُ
لِسَان۪ي فَاَرْسِلْ اِلٰى هٰرُونَ ﴿١٣﴾ وَلَهُمْ عَلَيَّ ذَنْبٌ فَاَخَافُ اَنْ يَقْتُلُونِ
﴿١٤﴾ قَالَ كَلَّا فَاذْهَبَا بِاٰيَاتِنَٓا اِنَّا مَعَكُمْ مُسْتَمِعُونَ ﴿١٥﴾ فَأْتِيَا
فِرْعَوْنَ فَقُولَٓا اِنَّا رَسُولُ رَبِّ الْعَالَم۪ينَ ﴿١٦﴾ اَنْ اَرْسِلْ مَعَنَا بَن۪ٓي
اِسْرَٓائ۪يلَ ﴿١٧﴾ قَالَ اَلَمْ نُرَبِّكَ ف۪ينَا وَل۪يدًا وَلَبِثْتَ ف۪ينَا مِنْ عُمُرِكَ
سِن۪ينَ ﴿١٨﴾ وَفَعَلْتَ فَعْلَتَكَ الَّت۪ي فَعَلْتَ وَاَنْتَ مِنَ الْكَافِر۪ينَ ﴿١٩﴾

قَالَ

## SÛREYÊ ŞU'ERA

Sûreyê Şu'era, 227 (du sed û bîst û heft) ayet e. Ji çar ayetên dawiyê pê ve tev li Mekkê daketine. Şu'era pirjimariya bêjeya 'şair' e ku bi maneya şairan e. Ji ber ku sûre di ayeta 224'em de behsa şairan kiriye jê re Şû'era hatiye gotin.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

**1- Ta. Sîn. Mîm.**

2- Ev ayetên kitêba ronker in.

3- (Ya Muhemmed!) Ma ji ber endîşeya ku ew bawerî nayînin tu dikî xwe bikujî?

4- Eger em bixwazin em ê ji esmên ji bo wan mucîzeyekê bînin, vêca ew ê jê re stûxwar bibin.

5- Her çiqas ayetek ji cem Xwedayê rehman ji wan re were, her ew berê xwe jê vedigerînin (û lê nafikirin).

6- Vêca wan pê bawerî neanî, êdî xebera wî ezabê ku wan pê tinaz dikir, di nêzîk de dê ji wan re bê.

7- Ma ew li erdê namêzînin ku ji her rengên xweşik û rind me ew hêşîn kiriye?

8- Bêguman di vê de îbretek heye, lê pirên wan bawerî nayînin.

9- Bêguman Xwedayê te her ew e yê desthilat, ê dilovîn.

10- Wê demê Xwedayê te gazî Mûsa kir (û jê re got): Bi pêxemberî here cem qewmê sitemkar...

11- Ku ew qewmê Firewn e. Erê ma ew ji cezadanê xwe naparêzin (û îman nayînin)?!

12- Mûsa got: Xwedayê min! Ez ditirsim ku ew bawerî bi min neyînin.

13- (Ez ditirsim ku) dilê min (ji ber nebaweriya wan) teng bibe û zimanê min negere, vêca Cibraîl bi wehyê) bişîne bal Harûnî (da ku ji bo min bibe arîkar).

14- Hem jî sûcekî ku ew dixin stûyê min heye, vêca ez ditirsim ku ew min bikujin.

15- Xwedê got: Nexêr (ew nikarin te bikujin)! Hûn her du tevî ayetên me herin. Bêguman em digel we ne (û em li ser we) guhdêr in.

16-Vêca hûn her du herin cem Firewn û (jê re) bêjin: Em qasidên Perwerdegarê alemê ne.

17-Vêca zarokên îsraîl digel me bişîne (û wan bes bide ezabdan).

18- (Gava fermana Xwedê jê re hate ragihandin, Firewn) Got: Erê ma me tu li cem xwe bi zarokîtî xwedî nekiribû û ma di nav me de bi salan nemayî?

19- Paşê te ew kiryar jî kir ya te kirî û tu merivekî nankor î.

قَالَ فَعَلْتُهَٓا اِذًا وَاَنَا مِنَ الضَّٓالّ۪ينَ ﴿٢٠﴾ فَفَرَرْتُ مِنْكُمْ لَمَّا خِفْتُكُمْ
فَوَهَبَ ل۪ي رَبّ۪ي حُكْمًا وَجَعَلَن۪ي مِنَ الْمُرْسَل۪ينَ ﴿٢١﴾ وَتِلْكَ نِعْمَةٌ
تَمُنُّهَا عَلَيَّ اَنْ عَبَّدْتَ بَن۪ٓي اِسْرَٓائ۪يلَ ﴿٢٢﴾ قَالَ فِرْعَوْنُ وَمَا رَبُّ الْعَالَم۪ينَ
﴿٢٣﴾ قَالَ رَبُّ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَمَا بَيْنَهُمَا اِنْ كُنْتُمْ مُوقِن۪ينَ
﴿٢٤﴾ قَالَ لِمَنْ حَوْلَهُٓ اَلَا تَسْتَمِعُونَ ﴿٢٥﴾ قَالَ رَبُّكُمْ وَرَبُّ اٰبَٓائِكُمُ
الْاَوَّل۪ينَ ﴿٢٦﴾ قَالَ اِنَّ رَسُولَكُمُ الَّذ۪ٓي اُرْسِلَ اِلَيْكُمْ لَمَجْنُونٌ ﴿٢٧﴾
قَالَ رَبُّ الْمَشْرِقِ وَالْمَغْرِبِ وَمَا بَيْنَهُمَا اِنْ كُنْتُمْ تَعْقِلُونَ ﴿٢٨﴾
قَالَ لَئِنِ اتَّخَذْتَ اِلٰهًا غَيْر۪ي لَاَجْعَلَنَّكَ مِنَ الْمَسْجُون۪ينَ ﴿٢٩﴾
قَالَ اَوَلَوْ جِئْتُكَ بِشَيْءٍ مُب۪ينٍ ﴿٣٠﴾ قَالَ فَأْتِ بِه۪ٓ اِنْ كُنْتَ مِنَ
الصَّادِق۪ينَ ﴿٣١﴾ فَاَلْقٰى عَصَاهُ فَاِذَا هِيَ ثُعْبَانٌ مُب۪ينٌ ﴿٣٢﴾ وَنَزَعَ
يَدَهُ فَاِذَا هِيَ بَيْضَٓاءُ لِلنَّاظِر۪ينَ ﴿٣٣﴾ قَالَ لِلْمَلَاِ حَوْلَهُٓ اِنَّ هٰذَا
لَسَاحِرٌ عَل۪يمٌ ﴿٣٤﴾ يُر۪يدُ اَنْ يُخْرِجَكُمْ مِنْ اَرْضِكُمْ بِسِحْرِه۪
فَمَاذَا تَأْمُرُونَ ﴿٣٥﴾ قَالُٓوا اَرْجِهْ وَاَخَاهُ وَابْعَثْ فِي الْمَدَٓائِنِ
حَاشِر۪ينَ ﴿٣٦﴾ يَأْتُوكَ بِكُلِّ سَحَّارٍ عَل۪يمٍ ﴿٣٧﴾ فَجُمِعَ السَّحَرَةُ
لِم۪يقَاتِ يَوْمٍ مَعْلُومٍ ﴿٣٨﴾ وَق۪يلَ لِلنَّاسِ هَلْ اَنْتُمْ مُجْتَمِعُونَ ﴿٣٩﴾

**20**- Mûsa (jê re) got: Wê çaxa ku min ew kir, ez nezan bûm (û qesda min ne kuştina wî bû).

**21**- Vêca dema ez ji we tirsiyam, ez ji ber we revîm. Piştre Xwedayê min pêxemberî da min û ez kirim ji pêxemberan.

**22**- Ew qenciya ku tu mineta wê li min dikî ma ew qencî ye, ma ne te zarokên îsraîl tev ji xwe re kirine kole û xizmetkar?

**23**- Firewn got: Xwedayê alemê kî ye?

**24**- Mûsa got: Ew Xwedayê erd û asîmanan û Xwedayê yên di navbera wan de ye, eger bi rastî yeqîniya we pê hebe.

**25**- Firewn, ji giregirên dawîrdora xwe re got: Erê ma we dengê (Musa) seh nekir?

**26**- Mûsa got: (Rebul alemîn) Hem Xwedayê we ye hem jî Xwedayê bav û bapîrên we yên pêşîn e.

**27**- Firewn got: Qasidê ku ji we re hatiye şandin muheqeq dîn e!

**28**- Mûsa got: Eger hûn eqlê xwe bişuxilînin (hûn ê fehm bikin ku) Ew Xwedayê rojhilat, rojava ye û yê çi tiştê ku di navbera wan de heye.

**29**- Firewn got: Eger ji bilî min tu ji xwe re xwedayekî din bigirî, sond be ku ez ê te bixim zîndanê !

**30**- Mûsa got: Ma ku min tiştekî aşkera ji te re anîbe (ku ew min rast bidêre) jî?

**31**- Firewn got: Eger bi rastî tu rastgo yî, de heydê wî bîne!

**32**- Vêca Mûsa gopalê xwe avêt û dît ku ew bû marekî aşîkar!

**33**- Destê xwe (ji paxila xwe) deranî, ew jî ji bo temaşekaran bû ronahiyeke spî (ku nûr jê dibariya).

**34**- Firewn, ji giregirên dawîrdora xwe re got: Bêguman ev sêrbazekî zana ye!

**35**- Ew bi sêrbaziya xwe dixwaze we ji cih û warê we bike der. (Gelî giregiran!) Vêca hûn ê çi fermanê bidin?

**36**- Giregiran jê re got: Cezayê wî û birayê wî bide paş, wezîfedaran bişîne bajaran, bila sêrbazan bicivînin.

**37**- Bila her sêrbazên zana ji te re bînin.

**38**- Vêca sêrbaz di rojeke wext kifşkirî de hatin civandin.

**39**- Ji xelkê re jî hat gotin: De hûn jî kom bibin!

لَعَلَّنَا نَتَّبِعُ السَّحَرَةَ اِنْ كَانُوا هُمُ الْغَالِبِينَ ﴿٤٠﴾ فَلَمَّا جَٓاءَ السَّحَرَةُ قَالُوا
لِفِرْعَوْنَ اَئِنَّ لَنَا لَاَجْرًا اِنْ كُنَّا نَحْنُ الْغَالِبِينَ ﴿٤١﴾ قَالَ نَعَمْ وَاِنَّكُمْ
اِذًا لَمِنَ الْمُقَرَّبِينَ ﴿٤٢﴾ قَالَ لَهُمْ مُوسٰٓى اَلْقُوا مَٓا اَنْتُمْ مُلْقُونَ ﴿٤٣﴾ فَاَلْقَوْا
حِبَالَهُمْ وَعِصِيَّهُمْ وَقَالُوا بِعِزَّةِ فِرْعَوْنَ اِنَّا لَنَحْنُ الْغَالِبُونَ ﴿٤٤﴾
فَاَلْقٰى مُوسٰى عَصَاهُ فَاِذَا هِيَ تَلْقَفُ مَا يَاْفِكُونَ ﴿٤٥﴾ فَاُلْقِيَ السَّحَرَةُ
سَاجِدِينَ ﴿٤٦﴾ قَالُٓوا اٰمَنَّا بِرَبِّ الْعَالَمِينَ ﴿٤٧﴾ رَبِّ مُوسٰى وَهٰرُونَ
﴿٤٨﴾ قَالَ اٰمَنْتُمْ لَهُ قَبْلَ اَنْ اٰذَنَ لَكُمْ اِنَّهُ لَكَبِيرُكُمُ الَّذِي عَلَّمَكُمُ
السِّحْرَ فَلَسَوْفَ تَعْلَمُونَ لَاُقَطِّعَنَّ اَيْدِيَكُمْ وَاَرْجُلَكُمْ مِنْ خِلَافٍ
وَلَاُصَلِّبَنَّكُمْ اَجْمَعِينَ ﴿٤٩﴾ قَالُوا لَا ضَيْرَ اِنَّٓا اِلٰى رَبِّنَا مُنْقَلِبُونَ
﴿٥٠﴾ اِنَّا نَطْمَعُ اَنْ يَغْفِرَ لَنَا رَبُّنَا خَطَايَانَٓا اَنْ كُنَّٓا اَوَّلَ الْمُؤْمِنِينَ
﴿٥١﴾ وَاَوْحَيْنَٓا اِلٰى مُوسٰٓى اَنْ اَسْرِ بِعِبَادِٓي اِنَّكُمْ مُتَّبَعُونَ ﴿٥٢﴾
فَاَرْسَلَ فِرْعَوْنُ فِي الْمَدَٓائِنِ حَاشِرِينَ ﴿٥٣﴾ اِنَّ هٰٓؤُلَٓاءِ لَشِرْذِمَةٌ
قَلِيلُونَ ﴿٥٤﴾ وَاِنَّهُمْ لَنَا لَغَٓائِظُونَ ﴿٥٥﴾ وَاِنَّا لَجَمِيعٌ حَاذِرُونَ ﴿٥٦﴾
فَاَخْرَجْنَاهُمْ مِنْ جَنَّاتٍ وَعُيُونٍ ﴿٥٧﴾ وَكُنُوزٍ وَمَقَامٍ كَرِيمٍ ﴿٥٨﴾
كَذٰلِكَ وَاَوْرَثْنَاهَا بَنٓي اِسْرَٓائِيلَ ﴿٥٩﴾ فَاَتْبَعُوهُمْ مُشْرِقِينَ ﴿٦٠﴾

فَلَمَّا

**40**- Gotin: Em di wê hêviyê de ne ku sêrbaz bi ser bikevin û em jî li pey wan biçin.

**41**- Vêca çi dema sêrbaz hatin ji Firewn re gotin: Eger em bi ser bikevin ma ji bo me xelatek heye, yan na?

**42**- Firewn ji wan re got: Belê, teqez hûn dê bibin ji yên nêzîkî min.

**43**- Mûsa ji wan re got: Tiştê ku hûn ê biavêjin, de heydê biavêjin!

**44**-Vêca sêrbazan werîs û gopalên xwe avêtin û gotin: Bi qeweta Firewn her em in yên serkeftî.

**45**- Vêca Mûsa jî gopalê xwe avêt, dîtin (ew bû marekî mezin û) sêra ku wan lêanî, dadibelîne!

**46**- Sêrbazan (piştî ku heqî dît) xwe avêtin erdê û çûne sicûdê.

**47**-Gotin: Me bawerî bi Xwedayê alemê anî...

**48**- Ku ew Xwedayê Mûsa û Harûn e.

**49**- Firewn got: Beriya ez destûrê bidim we, we çawa bawerî bi Mûsa anî! Bêguman her ew e mezinê we yê ku sêr fêrî we kiriye! Vêca hûn ê bizanin (ka ez ê çi bînim serê we). Sond be, ez ê dest û piyên we çep û rast jêkim û ez ê we tevan daleqînim.

**50**- Sêrbazan got: Xem nake, bêguman ma ne em ê li Xwedayê xwe vegerin!

**51**- Em hêvî dikin ku Xwedayê me li gunehên me bibore, lewra me beriya her kesî bawerî anî.

**52**- Me wehî da Mûsa ku bendeyên min bi şev (ji Misrê) derîne, bêguman ew ê bi dûv we bikevin.

**53**- Vêca Firewn wezîfedar şandin bajaran da ku leşkeran bidin hev.

**54**- (Ji wan re got:) Bêguman ev civateke hindik û kêmhêz in.

**55**- Birastî jî wan bi kar û kiryarên xwe em hêrs kirine.

**56**- Em jî teqez civateke (yekwicûd û) hişyar in.

**57**- Vêca Me jî ew (Firewn û civata wî) ji nava baxçe û kaniyan deranîn...

**58**- Û ji nava xezîne û (dîwan û) meqamên şerefnak jî.

**59**- Ha bi vî awayî (me ew deranîn û) Me zarokên îsraîl kirin mîratgirên wan.

**60**- (Firewn û civata xwe) di danê sibehê de ketin pey şopa wan.

فَلَمَّا تَرَٓاءَ الْجَمْعَانِ قَالَ اَصْحَابُ مُوسٰٓى اِنَّا لَمُدْرَكُونَ ﴿٦١﴾
قَالَ كَلَّاۚ اِنَّ مَعِيَ رَبّ۪ي سَيَهْد۪ينِ ﴿٦٢﴾ فَاَوْحَيْنَٓا اِلٰى مُوسٰٓى اَنِ اضْرِبْ
بِعَصَاكَ الْبَحْرَۜ فَانْفَلَقَ فَكَانَ كُلُّ فِرْقٍ كَالطَّوْدِ الْعَظ۪يمِۚ ﴿٦٣﴾
وَاَزْلَفْنَا ثَمَّ الْاٰخَر۪ينَۚ ﴿٦٤﴾ وَاَنْجَيْنَا مُوسٰى وَمَنْ مَعَهُٓ اَجْمَع۪ينَۚ
﴿٦٥﴾ ثُمَّ اَغْرَقْنَا الْاٰخَر۪ينَۜ ﴿٦٦﴾ اِنَّ ف۪ي ذٰلِكَ لَاٰيَةًۜ وَمَا كَانَ اَكْثَرُهُمْ
مُؤْمِن۪ينَ ﴿٦٧﴾ وَاِنَّ رَبَّكَ لَهُوَ الْعَز۪يزُ الرَّح۪يمُۚ ﴿٦٨﴾ وَاتْلُ عَلَيْهِمْ
نَبَاَ اِبْرٰه۪يمَۢ ﴿٦٩﴾ اِذْ قَالَ لِاَب۪يهِ وَقَوْمِه۪ مَا تَعْبُدُونَ ﴿٧٠﴾ قَالُوا
نَعْبُدُ اَصْنَامًا فَنَظَلُّ لَهَا عَاكِف۪ينَ ﴿٧١﴾ قَالَ هَلْ يَسْمَعُونَكُمْ اِذْ تَدْعُونَۙ
﴿٧٢﴾ اَوْ يَنْفَعُونَكُمْ اَوْ يَضُرُّونَ ﴿٧٣﴾ قَالُوا بَلْ وَجَدْنَٓا اٰبَٓاءَنَا
كَذٰلِكَ يَفْعَلُونَ ﴿٧٤﴾ قَالَ اَفَرَاَيْتُمْ مَا كُنْتُمْ تَعْبُدُونَۙ ﴿٧٥﴾ اَنْتُمْ
وَاٰبَٓاؤُ۬كُمُ الْاَقْدَمُونَ ﴿٧٦﴾ فَاِنَّهُمْ عَدُوٌّ ل۪ٓي اِلَّا رَبَّ الْعَالَم۪ينَۙ
﴿٧٧﴾ اَلَّذ۪ي خَلَقَن۪ي فَهُوَ يَهْد۪ينِۙ ﴿٧٨﴾ وَالَّذ۪ي هُوَ يُطْعِمُن۪ي
وَيَسْق۪ينِۙ ﴿٧٩﴾ وَاِذَا مَرِضْتُ فَهُوَ يَشْف۪ينِ ﴿٨٠﴾ وَالَّذ۪ي يُم۪يتُن۪ي
ثُمَّ يُحْي۪ينِۙ ﴿٨١﴾ وَالَّذ۪ٓي اَطْمَعُ اَنْ يَغْفِرَ ل۪ي خَط۪يٓـَٔت۪ي يَوْمَ
الدّ۪ينِۜ ﴿٨٢﴾ رَبِّ هَبْ ل۪ي حُكْمًا وَاَلْحِقْن۪ي بِالصَّالِح۪ينَۙ ﴿٨٣﴾

61- Dema her du desteyan hev dît, hevalên Mûsa gotin: Hey wax em hatin girtin!

62- Mûsa got: Nexêr, ne wisan e. Bêguman Xwedayê min digel min e, dê rê nîşanî min bide.

63- Beranberî vê me peyam da Mûsa, me jê re got: Gopalê xwe li behrê bixe! (Çi dema gopalê xwe lê da) di cih de bû du şeq (tê de dozdeh rê vebûn) her şeqekî avê bû wekî çiyakekî mezin.

64- Me ew ên din (Firewn û destegirên wî) di behrê de nêzîkî wan kirin.

65- Me Mûsa û yên digel wî tev rizgar kirin.

66- Paşê me ew ên din (Firewn û destegirên wî) xeniqandin.

67- Bêguman di vê de îbretek heye, lê pirên wan bawerî nayînin

68- Bêguman Xwedayê te her ew e yê desthilat, ê dilovîn.

69- (Ya Muhemmed!) Ji wan re serpêhatiya Îbrahîm jî bixwîne.

70- Dema Îbrahîm ji bavê xwe û gelê xwe re got: Hûn çi dihebînin?

71- Jê re gotin: Em pûtan dihebînin û em ê her û her perestina wan jî bikin.

72- Îbrahîm got: Erê baş e, dema ku hûn li ber wan digerin qey ew dengên we dibihîzin?

73- Yan jî ew feyde yan jî zerarê didin we?

74- Jê re gotin: Na! Lê belê me bav û bapîrên xwe dîtin ku wan jî welê dikir (vêca em jî li pey rêça wan diçin).

75- Îbrahîm got: Erê baş e, ma hûn fikirîne ka hûn perestina çi dikin?

76- Hûn û bav û bapîrên xwe yên berê.

77- Bêguman ew ji min re dijmin in; (dostê min) tenê Perwerdegarê alemê ye...

78- Ew e yê ku ez afirandime û riya rast nîşanî min daye...

79- Ew e yê ku xwarin û vexwarinê dide min...

80- Dema ez nexweş bikevim Ew e yê ku min şîfa bike...

81- Ew e yê ku min bimirîne, paşê (dîsa) min sax bike...

82- Ew e yê ku ez hêvî dikim ku roja xelat û celatê li şaşiyên min bibore.

83- Xwedayê min! Hîkmetê bide min û min bigihîne qencîkaran.

وَاجْعَلْ لِي لِسَانَ صِدْقٍ فِي الْاٰخِرٖينَۙ ﴿٨٤﴾ وَاجْعَلْنٖي مِنْ وَرَثَةِ
جَنَّةِ النَّعٖيمِۙ ﴿٨٥﴾ وَاغْفِرْ لِاَبٖٓي اِنَّهُ كَانَ مِنَ الضَّٓالّٖينَۙ ﴿٨٦﴾ وَلَا تُخْزِنٖي
يَوْمَ يُبْعَثُونَۙ ﴿٨٧﴾ يَوْمَ لَا يَنْفَعُ مَالٌ وَلَا بَنُونَۙ ﴿٨٨﴾ اِلَّا مَنْ اَتَى
اللّٰهَ بِقَلْبٍ سَلٖيمٍۜ ﴿٨٩﴾ وَاُزْلِفَتِ الْجَنَّةُ لِلْمُتَّقٖينَۙ ﴿٩٠﴾ وَبُرِّزَتِ الْجَحٖيمُ
لِلْغَاوٖينَۙ ﴿٩١﴾ وَقٖيلَ لَهُمْ اَيْنَ مَا كُنْتُمْ تَعْبُدُونَۙ ﴿٩٢﴾ مِنْ دُونِ اللّٰهِۜ هَلْ
يَنْصُرُونَكُمْ اَوْ يَنْتَصِرُونَۜ ﴿٩٣﴾ فَكُبْكِبُوا فٖيهَا هُمْ وَالْغَاوُنَۙ ﴿٩٤﴾
وَجُنُودُ اِبْلٖيسَ اَجْمَعُونَۜ ﴿٩٥﴾ قَالُوا وَهُمْ فٖيهَا يَخْتَصِمُونَۙ ﴿٩٦﴾
تَاللّٰهِ اِنْ كُنَّا لَفٖي ضَلَالٍ مُبٖينٍۙ ﴿٩٧﴾ اِذْ نُسَوّٖيكُمْ بِرَبِّ الْعَالَمٖينَ
﴿٩٨﴾ وَمَٓا اَضَلَّنَٓا اِلَّا الْمُجْرِمُونَ ﴿٩٩﴾ فَمَا لَنَا مِنْ شَافِعٖينَۙ ﴿١٠٠﴾
وَلَا صَدٖيقٍ حَمٖيمٍ ﴿١٠١﴾ فَلَوْ اَنَّ لَنَا كَرَّةً فَنَكُونَ مِنَ الْمُؤْمِنٖينَ ﴿١٠٢﴾
اِنَّ فٖي ذٰلِكَ لَاٰيَةًۜ وَمَا كَانَ اَكْثَرُهُمْ مُؤْمِنٖينَ ﴿١٠٣﴾ وَاِنَّ رَبَّكَ لَهُوَ الْعَزٖيزُ
الرَّحٖيمُ ﴿١٠٤﴾ كَذَّبَتْ قَوْمُ نُوحٍ الْمُرْسَلٖينَۚ ﴿١٠٥﴾ اِذْ قَالَ لَهُمْ اَخُوهُمْ
نُوحٌ اَلَا تَتَّقُونَۚ ﴿١٠٦﴾ اِنّٖي لَكُمْ رَسُولٌ اَمٖينٌۙ ﴿١٠٧﴾ فَاتَّقُوا اللّٰهَ وَاَطٖيعُونِۚ
﴿١٠٨﴾ وَمَٓا اَسْـَٔلُكُمْ عَلَيْهِ مِنْ اَجْرٍۚ اِنْ اَجْرِيَ اِلَّا عَلٰى رَبِّ الْعَالَمٖينَۚ
﴿١٠٩﴾ فَاتَّقُوا اللّٰهَ وَاَطٖيعُونِۜ ﴿١١٠﴾ قَالُوٓا اَنُؤْمِنُ لَكَ وَاتَّبَعَكَ الْاَرْذَلُونَۜ ﴿١١١﴾

حِزْبٌ ٣

قَالَ

**84**- Di nava kesên ku piştî min tên de, min bike ji yên ku bi rastî û duristî behsa wan tê kirin.

**85**- Min bike ji mîratgirên bihişta ku nimetên wê pir in.

**86**- Li bavê min jî bibore. (Tobe û îmanê bike qismetê wî) bêguman ew ji rêşaşan e.

**87**- Roja ku mirov bêne saxkirin, min riswa meke...

**88**- Ew roja ku mal û zarok feyde nadin tu kesî.

**89**- Ji bilî yê ku bi dilekî pak bête bal Xwedê ve.

**90**- (Wê rojê) Cenet ji mutteqiyan re tê nêzîkkirin.

**91**- Cehenem jî ji rêşaşên kafir re pêşçav dibe.

**92**- Ji wan re tê gotin: Ew ên ku we perestina wan dikir, ka li ku ne?

**93**- Ji bilî Ellah Teala, erê ma ew dikarin arîkariya we bikin, an jî arîkariya xwe bikin?

**94**- Êdî ew û me'bûdên wan yek li dû yekî di dojehê de tên werkirin.

**95**- Tevekî leşkerê Îblîsî jî.

**96**- Ew li gunehên xwe mukir hatin û bi hev re ketin nav gengeşiyê.

**97**- Em bi Xwedê sond dixwin ku em di nav rêşaşiyeke aşkera de bûn.

**98**- Lewra me hûn û Xwedayê alemê di yek rêzekê de digirtin.

**99**- Her wan gunehkaran em ji rê xistin.

**100**- Êdî ji me re ne mehdervan hene...

**101**- Ne jî dostekî nêzîk heye.

**102**- Ax xwezî ji me re vegerek (bi bal dinyayê ve) hebûya, vêca ku em jî bibûna ji bawermendan!

**103**- Bêguman di vê de îbretek heye, lê pirên wan bawerî nayînin.

**104**- Bêguman Xwedayê te her ew e yê desthilat, yê dilovîn.

**105**- Gelê Nûh jî bi pêxemberan bawerî neanî.

**106**- Dema birayê wan Nûh ji wan re got ma hûn (ji hatina li hemberî fermana Xwedê) natirsin?

**107**- Bêguman ez ji bo we pêxemberekî pêbawer im.

**108**- Vêca ji Xwedê Teala bitirsin û bi gotina min bikin.

**109**- Ez ji bo vê (teblîxa ku ji we re radigihînim) tu heqekî naxwazim (heta ku ji we re giran were), teqez xelata min ji Xwedayê alemê ye û hew

**110**- Vêca ji Xwedê Teala bitirsin û bi gotina min bikin.

**111**- (Qewmê wî jê re) Gotin: Em ê çawa bawerî bi te bînin, hal ev e ku yên kêm û reben dane pey te?!

قال وما علمي بما كانوا يعملون ١١٢ ان حسابهم الا على
ربي لو تشعرون ١١٣ وما انا بطارد المؤمنين ١١٤ ان انا الا نذير
مبين ١١٥ قالوا لئن لم تنته يا نوح لتكونن من المرجومين ١١٦
قال رب ان قومي كذبون ١١٧ فافتح بيني وبينهم فتحا ونجني
ومن معي من المؤمنين ١١٨ فانجيناه ومن معه في الفلك المشحون
١١٩ ثم اغرقنا بعد الباقين ١٢٠ ان في ذلك لاية وما كان اكثرهم
مؤمنين ١٢١ وان ربك لهو العزيز الرحيم ١٢٢ كذبت عاد المرسلين
١٢٣ اذ قال لهم اخوهم هود الا تتقون ١٢٤ اني لكم رسول امين
١٢٥ فاتقوا الله واطيعون ١٢٦ وما اسئلكم عليه من اجر ان اجري
الا على رب العالمين ١٢٧ اتبنون بكل ريع اية تعبثون ١٢٨
وتتخذون مصانع لعلكم تخلدون ١٢٩ واذا بطشتم بطشتم
جبارين ١٣٠ فاتقوا الله واطيعون ١٣١ واتقوا الذي
امدكم بما تعلمون ١٣٢ امدكم بانعام وبنين ١٣٣
وجنات وعيون ١٣٤ اني اخاف عليكم عذاب يوم عظيم
١٣٥ قالوا سواء علينا اوعظت ام لم تكن من الواعظين ١٣٦

**112**- Nûh got: Der barê ya ku ew dikin de tu zanîna min nîn e.

**113**- Hesabê wan tenê li cem Xwedayê min e, eger bi rastî hûn fehm bikin.

**114**- Ez ne ew im ku bawermendan ji cem xwe biqewirînim.

**115**- Ez tenê hişyarkerekî aşkera me (ku dewlemend û xizanan wekhev hişyar dikim).

**116**- Gotin: Ey Nûh! Eger tu (ji vê doza xwe) venegerî, teqez tu dê bi keviran bêyî kuştin.

**117**- Nûh got: Xwedayê min! Gelê min, bawerî bi min neanî.

**118**- Êdî di navbera min û wan de hukmê xwe bike, min û bawermendên digel min rizgar bike.

**119**-Vêca Me Nûh û yên ku digel wî bûn di keştiya tije (mirov, ajal û teyr) de reha kirin.

**120**- Piştre jî me ew ên ku (ji keştiyê) xwe dabûn paş, di avê de xeniqandin.

**121**- Bêguman di vê de îbretek heye, lê pirên wan bawerî nayînin.

**122**- Bêguman Xwedayê te, her ew e yê desthilat, ê dilovîn.

**123**- Gelê Ad jî bi pêxemberên xwe bawerî neanî.

**124**- Dema birayê wan Hûd ji wan re got: Ma hûn ji Xwedê Teala natirsin (ku hûn bi dîgerê wî diperizin)?

**125**- Bêguman ez pêxemberek im ku bi bal we ve hatime şandin, emîn û pêbawer im.

**126**- Vêca ji Xwedê bitirsin û bi gotina min bikin.

**127**- Ez ji bo vê (teblîxa ku ji we re radigihînim) tu heqekî naxwazim (heta ku ji we re giran were), teqez xelata min ji Xwedayê alemê ye û hew

**128**- Erê ma li her cihê bilind, hûn ê bêfeyde û bêmeqsed avahiyên bi nav û nîşan ava bikin?

**129**- Bi hêviya ku hûn ê her û her bimînin hûn avahiyên mikûm û mezin lêdikin?

**130**- Dema ku hûn ceza didin, hûn bi sitemkarî ceza didin?

**131**- Vêca ji Xwedê bitirsin û bi gotina min bikin.

**132**- Bitirsin ji wî Xwedayê ku tiştê hûn dizanin bexşî we kiriye.

**133**- Ji wî Xwedayê ku terş (deve, dewar û pez) û zarok bexşî we kirine.

**134**- Ji wî Xwedayê ku baxçe û kanî dane we.

**135**- Bêguman ez ji bo we, ji ezabê rojeke mezin ditirsim (ku eger hûn bi gotina min nekin, hûn ê bikevinê).

**136**- Jê re gotin: Li bal me wekhev e; çi tu şîretan bikî, çi jî tu nekî.

اِنْ هٰذَٓا اِلَّا خُلُقُ الْاَوَّلٖينَۙ ﴿١٣٧﴾ وَمَا نَحْنُ بِمُعَذَّبٖينَۚ ﴿١٣٨﴾ فَكَذَّبُوهُ
فَاَهْلَكْنَاهُمْۜ اِنَّ فٖي ذٰلِكَ لَاٰيَةًۜ وَمَا كَانَ اَكْثَرُهُمْ مُؤْمِنٖينَ ﴿١٣٩﴾ وَاِنَّ
رَبَّكَ لَهُوَ الْعَزٖيزُ الرَّحٖيمُ ﴿١٤٠﴾ كَذَّبَتْ ثَمُودُ الْمُرْسَلٖينَۚ ﴿١٤١﴾
اِذْ قَالَ لَهُمْ اَخُوهُمْ صَالِحٌ اَلَا تَتَّقُونَۚ ﴿١٤٢﴾ اِنّٖي لَكُمْ رَسُولٌ اَمٖينٌۙ
﴿١٤٣﴾ فَاتَّقُوا اللّٰهَ وَاَطٖيعُونِۚ ﴿١٤٤﴾ وَمَٓا اَسْـَٔلُكُمْ عَلَيْهِ مِنْ اَجْرٍۚ اِنْ اَجْرِيَ
اِلَّا عَلٰى رَبِّ الْعَالَمٖينَۜ ﴿١٤٥﴾ اَتُتْرَكُونَ فٖي مَا هٰهُنَٓا اٰمِنٖينَۙ ﴿١٤٦﴾ فٖي
جَنَّاتٍ وَعُيُونٍۙ ﴿١٤٧﴾ وَزُرُوعٍ وَنَخْلٍ طَلْعُهَا هَضٖيمٌۚ ﴿١٤٨﴾ وَتَنْحِتُونَ
مِنَ الْجِبَالِ بُيُوتًا فَارِهٖينَۚ ﴿١٤٩﴾ فَاتَّقُوا اللّٰهَ وَاَطٖيعُونِۚ ﴿١٥٠﴾ وَلَا تُطٖيعُٓوا
اَمْرَ الْمُسْرِفٖينَۙ ﴿١٥١﴾ اَلَّذٖينَ يُفْسِدُونَ فِي الْاَرْضِ وَلَا يُصْلِحُونَ
﴿١٥٢﴾ قَالُٓوا اِنَّمَٓا اَنْتَ مِنَ الْمُسَحَّرٖينَۚ ﴿١٥٣﴾ مَٓا اَنْتَ اِلَّا بَشَرٌ
مِثْلُنَاۚ فَأْتِ بِاٰيَةٍ اِنْ كُنْتَ مِنَ الصَّادِقٖينَ ﴿١٥٤﴾ قَالَ هٰذِهٖ نَاقَةٌ
لَهَا شِرْبٌ وَلَكُمْ شِرْبُ يَوْمٍ مَعْلُومٍۚ ﴿١٥٥﴾ وَلَا تَمَسُّوهَا بِسُٓوءٍ
فَيَأْخُذَكُمْ عَذَابُ يَوْمٍ عَظٖيمٍ ﴿١٥٦﴾ فَعَقَرُوهَا فَاَصْبَحُوا
نَادِمٖينَۙ ﴿١٥٧﴾ فَاَخَذَهُمُ الْعَذَابُۜ اِنَّ فٖي ذٰلِكَ لَاٰيَةًۜ وَمَا كَانَ
اَكْثَرُهُمْ مُؤْمِنٖينَ ﴿١٥٨﴾ وَاِنَّ رَبَّكَ لَهُوَ الْعَزٖيزُ الرَّحٖيمُ ﴿١٥٩﴾

كَذَّبَتْ

**137**- Ev a (ku em li serê ne) ji dînê bav û bapîrên me pê ve ne tiştekî din e.

**138**- Em ê qet neyên ezabdayîn.

**139**- Wan bawerî bi Hûd neanî, vêca me jî ew helak kirin. Bêguman di vê de îbretek heye, lê pirên wan bawerî nayînin.

**140**- Bêguman Xwedayê te her ew e yê desthilat, ê dilovîn.

**141**- Gelê Semûd jî bi pêxemberên xwe bawerî neanî.

**142**- Wê demê birayê wan Salih ji wan re got: Ma hûn ji Xwedê natirsin (ku hûn ji dîgerê wî îbadetê dikin)?

**143**- Bêguman ez pêxemberek im bi bal we ve hatime şandin, emîn û pêbawer im.

**144**- Vêca ji Xwedê Teala bitirsin û bi gotina min bikin.

**145**- Ez ji bo vê (teblîxa ku ji we re radigihînim) tu heqekî naxwazim (heta ku ji we re giran were), teqez xelata min ji Xwedayê alemê ye û hew.

**146**- Erê ma ji we we ye ku hûn ê li vê (dinyayê) ewle bimînin û Xwedê dê ezab nede we?

**147**- Di nava baxçe û kaniyan de...

**148**- Di nava çandinî û darxurman de, di ew ên gihiştî, taze û xweş de.

**149**- Hûn di çiyan de bi hostayî xaniyan dikolin.

**150**- Vêca ji Xwedê Teala bitirsin û bi gotina min bikin.

**151**- Bi gotina musrifan mekin...

**152**- Ew ên ku li ser rûyê erdê fesadiyê dikin û qenciyê nakin.

**153**- Jê re gotin: Bêguman tu bes ji wan kesan î ku sêr li wan hatiye kirin!

**154**- Bes tu jî mirovekî wekî me yî. Eger bi rastî tu rast dibêjî de heydê mucîzeyekê ji me re bîne.

**155**- Salih ji wan re got: Ha ev deve ji we re mucîze ye, rojekê dora avê jê re ye û rojeke diyar jî ji we re ye.

**156**- Zinhar bi neqencî dest neavêjinê! Vêca ezabê rojeke mezin dê we bigire.

**157**- Lê belê wan deve gurand û (çi dema yeqîn kirin ku ezab dê were wan) poşman bûn.

**158**- Ji ber vê kirina wan ezab ew girtin (û ji navê birin). Bêguman di vê de îbretek heye, lê pirên wan bawerî nayînin.

**159**- Bêguman Xwedayê te her ew e yê desthilat, ê dilovîn.

**160**- Gelê Lût jî bi pêxemberên xwe bawerî neanî.

**161**- Dema birayê wan Lût ji wan re got: Ma hûn ji Xwedê Teala natirsin (ku hûn bi dîgerê wî diperizin)?

**162**- Bêguman ez pêxemberek im bi bal we ve hatime şandin, emîn û pêbawer im.

**163**- Vêca ji Xwedê Teala bitirsin û bi gotina min bikin.

**164**- Ez ji bo vê (teblîxa ku ji we re radigihînim) tu heqekî naxwazim (heta ku ji we re giran were), teqez xelata min ji Xwedayê alemê ye û hew.

**165**- Erê ma hûn bi zilaman re dizewicin?

**166**- Ew jinên ku Xwedê Teala (ji bo neseb û pêjiyanê) ji we re afirandin û ji we re helal kirin jî hûn dihêlin. Nexêr, ne wisan e, belkî hûn qewmekî tixûbbihêr in!

**167**- Wan jî got: Ey Lût! Eger tu ji vê (doza xwe) venegerî bêguman em ê te ji nav xwe derxin!

**168**- Lût ji wan re got: Bêguman ez ji vê kirina we ya kirêt pir dikeribim.

**169**- Xwedayê min! Min û malbata min ji (gunehê) ya ku ew dikin xelas bike.

**170**- Ji bo vê daxwaza wî, me ew û malbata wî tev rizgar kirin.

**171**- Lê belê pîreka wî na; ew di nav ên helakbûyî de ma.

**172**- Piştre me yên din birin helakê.

**173**- Me kevir bi ser wan de barandin, çi pîs baran bû li yên ku hatin hişyarkirin!

**174**- Bêguman di vê de îbretek heye, lê pirên wan bawerî nayînin.

**175**- Bêguman Xwedayê te, her ew e yê desthilat, ê dilovîn.



كَذَّبَتْ قَوْمُ لُوطٍ الْمُرْسَلِينَ ١٦٠ اِذْ قَالَ لَهُمْ اَخُوهُمْ لُوطٌ اَلَا تَتَّقُونَ
١٦١ اِنِّي لَكُمْ رَسُولٌ اَمِينٌ ١٦٢ فَاتَّقُوا اللّٰهَ وَاَطِيعُونِ ١٦٣ وَمَا اَسْـَٔلُكُمْ
عَلَيْهِ مِنْ اَجْرٍ اِنْ اَجْرِيَ اِلَّا عَلٰى رَبِّ الْعَالَمِينَ ١٦٤ اَتَأْتُونَ الذُّكْرَانَ
مِنَ الْعَالَمِينَ ١٦٥ وَتَذَرُونَ مَا خَلَقَ لَكُمْ رَبُّكُمْ مِنْ اَزْوَاجِكُمْ
بَلْ اَنْتُمْ قَوْمٌ عَادُونَ ١٦٦ قَالُوا لَئِنْ لَمْ تَنْتَهِ يَا لُوطُ لَتَكُونَنَّ مِنَ
الْمُخْرَجِينَ ١٦٧ قَالَ اِنِّي لِعَمَلِكُمْ مِنَ الْقَالِينَ ١٦٨ رَبِّ نَجِّنِي
وَاَهْلِي مِمَّا يَعْمَلُونَ ١٦٩ فَنَجَّيْنَاهُ وَاَهْلَهُ اَجْمَعِينَ ١٧٠ اِلَّا عَجُوزًا
فِي الْغَابِرِينَ ١٧١ ثُمَّ دَمَّرْنَا الْاٰخَرِينَ ١٧٢ وَاَمْطَرْنَا عَلَيْهِمْ مَطَرًا
فَسَاءَ مَطَرُ الْمُنْذَرِينَ ١٧٣ اِنَّ فِي ذٰلِكَ لَاٰيَةً وَمَا كَانَ اَكْثَرُهُمْ
مُؤْمِنِينَ ١٧٤ وَاِنَّ رَبَّكَ لَهُوَ الْعَزِيزُ الرَّحِيمُ ١٧٥ كَذَّبَ
اَصْحَابُ لْـَٔيْكَةِ الْمُرْسَلِينَ ١٧٦ اِذْ قَالَ لَهُمْ شُعَيْبٌ اَلَا تَتَّقُونَ
١٧٧ اِنِّي لَكُمْ رَسُولٌ اَمِينٌ ١٧٨ فَاتَّقُوا اللّٰهَ وَاَطِيعُونِ ١٧٩ وَمَا اَسْـَٔلُكُمْ
عَلَيْهِ مِنْ اَجْرٍ اِنْ اَجْرِيَ اِلَّا عَلٰى رَبِّ الْعَالَمِينَ ١٨٠ اَوْفُوا الْكَيْلَ
وَلَا تَكُونُوا مِنَ الْمُخْسِرِينَ ١٨١ وَزِنُوا بِالْقِسْطَاسِ الْمُسْتَقِيمِ ١٨٢
وَلَا تَبْخَسُوا النَّاسَ اَشْيَاءَهُمْ وَلَا تَعْثَوْا فِي الْاَرْضِ مُفْسِدِينَ ١٨٣

**176**- Gelê Eyketê jî bi pêxemberên xwe bawerî neanîn.

**177**- Dema Şûeyb ji wan re got: Ma hûn ji Xwedê Teala natirsin (ku hûn bi dîgerê wî diperizin)?

**178**- Bêguman ez pêxemberek im bi bal we ve hatime şandin, emîn û pêbawer im.

**179**- Vêca ji Xwedê Teala bitirsin û bi gotina min bikin.

**180**- Ez ji bo vê (teblîxa ku ji we re radigihînim) tu heqekî naxwazim (heta ku ji we re giran were), teqez xelata min ji Xwedayê alemê ye û hew.

**181**- Pîvanê tam bikin û ji kêmkeran nebin.

**182**- Bi mêzîna rast bikişînin.

**183**- Ji heqê mirovan tiştekî kêm nekin û li ser erdê gelacî û tevdanê dernexin.

وَاتَّقُوا الَّذٖى خَلَقَكُمْ وَالْجِبِلَّةَ الْاَوَّلٖينَ ﴿١٨٤﴾ قَالُٓوا اِنَّمَٓا اَنْتَ
مِنَ الْمُسَحَّرٖينَ ﴿١٨٥﴾ وَمَٓا اَنْتَ اِلَّا بَشَرٌ مِثْلُنَا وَاِنْ نَظُنُّكَ
لَمِنَ الْكَاذِبٖينَ ﴿١٨٦﴾ فَاَسْقِطْ عَلَيْنَا كِسَفًا مِنَ السَّمَٓاءِ اِنْ كُنْتَ
مِنَ الصَّادِقٖينَ ﴿١٨٧﴾ قَالَ رَبّٖٓى اَعْلَمُ بِمَا تَعْمَلُونَ ﴿١٨٨﴾ فَكَذَّبُوهُ
فَاَخَذَهُمْ عَذَابُ يَوْمِ الظُّلَّةِ اِنَّهُ كَانَ عَذَابَ يَوْمٍ عَظٖيمٍ ﴿١٨٩﴾
اِنَّ فٖى ذٰلِكَ لَاٰيَةً وَمَا كَانَ اَكْثَرُهُمْ مُؤْمِنٖينَ ﴿١٩٠﴾ وَاِنَّ رَبَّكَ لَهُوَ
الْعَزٖيزُ الرَّحٖيمُ ﴿١٩١﴾ وَاِنَّهُ لَتَنْزٖيلُ رَبِّ الْعَالَمٖينَ ﴿١٩٢﴾ نَزَلَ بِهِ
الرُّوحُ الْاَمٖينُ ﴿١٩٣﴾ عَلٰى قَلْبِكَ لِتَكُونَ مِنَ الْمُنْذِرٖينَ ﴿١٩٤﴾ بِلِسَانٍ
عَرَبِيٍّ مُبٖينٍ ﴿١٩٥﴾ وَاِنَّهُ لَفٖى زُبُرِ الْاَوَّلٖينَ ﴿١٩٦﴾ اَوَلَمْ يَكُنْ لَهُمْ
اٰيَةً اَنْ يَعْلَمَهُ عُلَمٰٓؤُا بَنٖٓى اِسْرَٓائٖيلَ ﴿١٩٧﴾ وَلَوْ نَزَّلْنَاهُ عَلٰى بَعْضِ
الْاَعْجَمٖينَ ﴿١٩٨﴾ فَقَرَاَهُ عَلَيْهِمْ مَا كَانُوا بِهٖ مُؤْمِنٖينَ ﴿١٩٩﴾ كَذٰلِكَ
سَلَكْنَاهُ فٖى قُلُوبِ الْمُجْرِمٖينَ ﴿٢٠٠﴾ لَا يُؤْمِنُونَ بِهٖ حَتّٰى
يَرَوُا الْعَذَابَ الْاَلٖيمَ ﴿٢٠١﴾ فَيَأْتِيَهُمْ بَغْتَةً وَهُمْ لَا يَشْعُرُونَ ﴿٢٠٢﴾
فَيَقُولُوا هَلْ نَحْنُ مُنْظَرُونَ ﴿٢٠٣﴾ اَفَبِعَذَابِنَا يَسْتَعْجِلُونَ ﴿٢٠٤﴾ اَفَرَاَيْتَ
اِنْ مَتَّعْنَاهُمْ سِنٖينَ ﴿٢٠٥﴾ ثُمَّ جَٓاءَهُمْ مَا كَانُوا يُوعَدُونَ ﴿٢٠٦﴾

مَٓا اَغْنٰى

**184**- Xwe ji ezabê Ellah Teala biparêzin, ew ê ku hûn û neslên berê afirandine.

**185**- Jê re gotin: Bêguman tu bes ji wan kesan î ku sêr li wan hatiye kirin?

**186**- Tu jî mirovekî wekî me yî û em te ji derewbêjan dizanin.

**187**- Eger bi rastî tu ji rastbêjan î, de heydê ji esmên parçeyekî bi ser me de bîne.

**188**- Şûeyb got: Xwedayê min bi kirinên we bêhtir dizane.

**189**- Wan bawerî pê neanî, vêca ezabê roja bi ewr û mij ew girtin. Bi rastî ew ezabê rojeke mezin bû!

**190**- Bêguman di vê de îbretek heye, lê pirên wan bawerî nayînin.

**191**- Bêguman Xwedayê te her ew e yê desthilat, yê dilovîn.

**192**- Bêguman Quran ji aliyê Xwedayê alemê ve hatiye nazilkirin.

**193**- Ruhul Emîn (Cebraîl) ev Quran aniye xwarê.

**194**- Li ser dilê te ji bo ku tu bibî ji hişyarkeran.

**195**- Bi zimanekî erebiyekê zelal.

**196**- Bêguman (mizgîn û saloxên vê) Quranê, di kitêbên pêşiyan de heye.

**197**- Ma ku alimên îsraîliyan vê quranê nas dikin û dipejirînin, ma ev ji wan re ne delîlek e (ku ew heq e)?

**198**- Eger me Quran li ser yê ku ne ereb e hinartbûya...

**199**- Vêca ji wan re jî bixwenda, dîsa dê bawerî pê neaniyana.

**200**- Bi vî awayî me (tekzîba) wê xistiye dilê gunehkarên kafir.

**201**- Ji ber wê, heta ku ew ezabê dijwar nebînin dê bawerî pê neyînin. (Lê belê dema ku ezabê dijwar bibînin û ji nû bawerî pê bînin baweriya wan dê tu feydê nede wan).

**202**- Ha ev (ezab) ji nişka ve dê were wan û haya wan ji (hatina) wî nîn e.

**203**- Wê çaxê dê bibêjin: Gelo ji bo ku em (bawerî bînin) muhlet ji me re tê dayîn?

**204**- Qey ew bi lez ezabê me dixwazin?

**205**- (Ya Muhemmed!) De ka bibêje, eger bi salan em jiyaneke xweş bidin wan.

**206**- Piştre (ezabê) ku peymana wî ji wan re hatiye dayîn, were wan.

مَٓا اَغْنٰى عَنْهُمْ مَا كَانُوا يُمَتَّعُونَ ﴿٢٠٧﴾ وَمَٓا اَهْلَكْنَا مِنْ قَرْيَةٍ
اِلَّا لَهَا مُنْذِرُونَ ﴿٢٠٨﴾ ذِكْرٰى وَمَا كُنَّا ظَالِم۪ينَ ﴿٢٠٩﴾ وَمَا تَنَزَّلَتْ
بِهِ الشَّيَاط۪ينُ ﴿٢١٠﴾ وَمَا يَنْبَغ۪ى لَهُمْ وَمَا يَسْتَط۪يعُونَ ﴿٢١١﴾ اِنَّهُمْ عَنِ
السَّمْعِ لَمَعْزُولُونَ ﴿٢١٢﴾ فَلَا تَدْعُ مَعَ اللّٰهِ اِلٰهًا اٰخَرَ فَتَكُونَ مِنَ
الْمُعَذَّب۪ينَ ﴿٢١٣﴾ وَاَنْذِرْ عَش۪يرَتَكَ الْاَقْرَب۪ينَ ﴿٢١٤﴾ وَاخْفِضْ جَنَاحَكَ
لِمَنِ اتَّبَعَكَ مِنَ الْمُؤْمِن۪ينَ ﴿٢١٥﴾ فَاِنْ عَصَوْكَ فَقُلْ اِنّ۪ى بَر۪ٓیءٌ مِمَّا
تَعْمَلُونَ ﴿٢١٦﴾ وَتَوَكَّلْ عَلَى الْعَز۪يزِ الرَّح۪يمِ ﴿٢١٧﴾ اَلَّذ۪ى يَرٰيكَ ح۪ينَ تَقُومُ
﴿٢١٨﴾ وَتَقَلُّبَكَ فِى السَّاجِد۪ينَ ﴿٢١٩﴾ اِنَّهُ هُوَ السَّم۪يعُ الْعَل۪يمُ ﴿٢٢٠﴾ هَلْ
اُنَبِّئُكُمْ عَلٰى مَنْ تَنَزَّلُ الشَّيَاط۪ينُ ﴿٢٢١﴾ تَنَزَّلُ عَلٰى كُلِّ اَفَّاكٍ اَث۪يمٍ
﴿٢٢٢﴾ يُلْقُونَ السَّمْعَ وَاَكْثَرُهُمْ كَاذِبُونَ ﴿٢٢٣﴾ وَالشُّعَرَٓاءُ يَتَّبِعُهُمُ الْغَاوُنَ
﴿٢٢٤﴾ اَلَمْ تَرَ اَنَّهُمْ ف۪ى كُلِّ وَادٍ يَه۪يمُونَ ﴿٢٢٥﴾ وَاَنَّهُمْ يَقُولُونَ مَا لَا يَفْعَلُونَ
﴿٢٢٦﴾ اِلَّا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ وَذَكَرُوا اللّٰهَ كَث۪يرًا وَانْتَصَرُوا
مِنْ بَعْدِ مَا ظُلِمُوا وَسَيَعْلَمُ الَّذ۪ينَ ظَلَمُٓوا اَىَّ مُنْقَلَبٍ يَنْقَلِبُونَ ﴿٢٢٧﴾

## سُورَةُ النَّمْلِ مَكِّيَّةٌ وَهِىَ ثَلَاثٌ وَتِسْعُونَ اٰيَةً

**207**- Teqez ew xweşiya ku pê jiyane dê feydeyekê nede wan.

**208**- Çiqas welatekî ku me (xelkê wê) helak kiribe her ji wan re pêxember hebûne (ku ew ji ezabê Xwedê) hişyar kirine.

**209**- (Helaka wan da ku) ji wan re bibe pend û şîret û Me bi helakkirina wan zilm li wan nekiriye.

**210**- Şeytanan ev Quran danexistiye.

**211**- Ev ji wan re nabe û nikarin vê bikin jî.

**212**- Ew ji guhdarîkirina wehiyê dûr hatine girtin.

**213**-Vêca digel Ellah Teala bi tu îlahan neperize (û jê re neke hevpişk), vêca tu dê bibî ji yên ku bi ber ezab dikevin!

**214**- (Berî her kesî) xwedî û lêzimên xwe yên nêzîk hişyar bike.

**215**- Ji bo bawermendên ku dane pey te xwe perşikestî û nerm bike.

**216**- Eger guhdariya te nekirin, vêca bibêje: Bêguman ez ji ya ku hûn dikin bêrî me.

**217**- Tu xwe bispêre wî Xwedayê desthilat ê dilovîn.

**218**- Ew Xwedayê dema tu radibî (şevnimêjan) te dibîne.

**219**- Rabûn û rûniştina te ya di nav nimêjkaran de jî (dibîne).

**220**- Bêguman Xweda her ew e yê bihîzer, ê zana.

**221**- Ma ez ji we re nebêjim ka şeytan dadikevin ser dilê kê?

**222**- Ew dadikevin ser dilê her kesê pir dewrewkar ê pir gunehkar.

**223**- Ew (li asîmanan) guhveçiniyê dikin û pirên wan derewker in.

**224**- Herçî ku şair (ên gawir) in, mirovên jirêderketî li pey wan dikevin.

**225**- Ma tu nizanî ku ew bêzanîn û armanc xwe berdidin nav her derew û hunerê.

**226**- Bêguman ew ya ku nakin dibêjin.

**227**- Ji bilî wan şairên ku wan bawerî aniye, ew ên ku kar û kiryarên qenc kirine, ew ên ku zikrê Xwedê pir kirine û piştî ku neheqî li wan hatî kirin xwe bi ser xistine (ew cuda ne). Teqez ên ku zilim kirine, dê bizanin ka bi bal ku cihî û kîjan encamê ve vegerin.



## SÛREYÊ NEML

Sûreyê Neml, 93 (not û sê) ayet e. Li Mekkê daketiye. Sûre navê xwe ji peyva Neml girtiye ku bi maneya mîro (morî -gêrik) tê û di ayeta 18'em de bihuriye. Sûreyê Neml jî bi girîngî li ser mijara bîr û baweriyê: "Yekîtiya Xwed, pêxembertî û saxbûna piştî mirinê" radiweste. Sûreyê Neml, yek ji her sê sûreyan e ku peyapey nazil bûne û di Qur'anê de jî li pey hev hatine rêzkirin. Her wiha rêbaza wan her sê sûreyan jî di bara ragihandina qiseyên wan milletên ku derbas bûne de jî pir nêzîkî hev e. Ew her sê sûre jî ev in: "Şû'era, Neml û Qeses".

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

1- **Ta. Sîn.** Ev sûre, ayetên Quranê ne û yên kitêba ronker in.

2- Ew ji bo bawermendan, rêber û mizgîn e.

3- Ew bawermendên ku nimêjê bi awayê pêdivî dikin, zekatê didin û bi axîretê ji dil bawerî tînin...

4- Bêguman ew ên ku bawerî bi axîretê nayînin, me ji wan re kiryarên wan xweş nîşan daye, vêca ew jî tê de sergêjane digevizin.

5- Ha ew, ew in ku (li dinyayê) ji wan re pîstirîn ezab heye û li axîretê jî ew yên herî xesirî ne.

6- Bêguman tu vê Quranê ji cem Xwedayekî ku hekîm e, zana ye werdigirî.

7- Wê demê Mûsa ji ehlê xwe re got: Min agirek dît, ez ê (biçim) ji we re ji wê derê xeberekê bînim an jî ji we re bizotekî êgir bînim ji bo ku hûn xwe pê germ bikin!

8- Gava Mûsa hate wê dera agir lê, bang lê hate kirin: Ew ên li cem êgir û yên li dawîrdora êgir pîrozdêrayî ne! Xwedayê alemê Ellah Teala ji hemû kêmasiyan pak û dûr e!

9- Ey Mûsa! Rewş ev e; Ez Ellah Teala me, ew ê ku di kar û barê xwe de serdest, desthilat û xwedanhîkmet e.

10- Tu gopalê xwe biavêje! (Mûsa jî gopalê xwe avêt). Vêca dema Mûsa dît ku gopalê wî wek mar bi lez xwe diavêje û diçe, (ji tirsa) revî û li pişt xwe neziviri. (Me jê re got:) Ey Mûsa! Metirse, bêguman pêxember li cem min natirsin.

11- Lê belê yê zilim kir, paşê tobe bike û li şûna xerabiyê qenciyê bike, bêguman ez gunehjêbir û dilovîn im.

12- Destê xwe hêdîka têxe paxila xwe, dê spî derkeve; spîtiyeke ne ji nexweşî. Tu digel van neh mucîzeyan here cem Firewn û gelê wî. Bêguman ew civateke jirêderketî û fasiq in.

13- Çi dema ku mucîzeyên me aşkera hatin pêşberî çavên wan, gotin: Ev sêreke aşkera ye.

وَجَحَدُوا بِهَا وَاسْتَيْقَنَتْهَٓا اَنْفُسُهُمْ ظُلْمًا وَعُلُوًّاۜ فَانْظُرْ كَيْفَ
كَانَ عَاقِبَةُ الْمُفْسِدِينَ ﴿١٤﴾ وَلَقَدْ اٰتَيْنَا دَاوُ۫دَ وَسُلَيْمٰنَ عِلْمًاۚ
وَقَالَا الْحَمْدُ لِلّٰهِ الَّذ۪ي فَضَّلَنَا عَلٰى كَث۪يرٍ مِنْ عِبَادِهِ الْمُؤْمِن۪ينَ ﴿١٥﴾
وَوَرِثَ سُلَيْمٰنُ دَاوُ۫دَ وَقَالَ يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ عُلِّمْنَا مَنْطِقَ الطَّيْرِ
وَاُو۫ت۪ينَا مِنْ كُلِّ شَيْءٍۜ اِنَّ هٰذَا لَهُوَ الْفَضْلُ الْمُب۪ينُ ﴿١٦﴾ وَحُشِرَ
لِسُلَيْمٰنَ جُنُودُهُ مِنَ الْجِنِّ وَالْاِنْسِ وَالطَّيْرِ فَهُمْ يُوزَعُونَ ﴿١٧﴾
حَتّٰٓى اِذَٓا اَتَوْا عَلٰى وَادِ النَّمْلِۙ قَالَتْ نَمْلَةٌ يَٓا اَيُّهَا النَّمْلُ ادْخُلُوا
مَسَاكِنَكُمْۚ لَا يَحْطِمَنَّكُمْ سُلَيْمٰنُ وَجُنُودُهُۙ وَهُمْ
لَا يَشْعُرُونَ ﴿١٨﴾ فَتَبَسَّمَ ضَاحِكًا مِنْ قَوْلِهَا وَقَالَ رَبِّ
اَوْزِعْن۪ٓي اَنْ اَشْكُرَ نِعْمَتَكَ الَّت۪ٓي اَنْعَمْتَ عَلَيَّ وَعَلٰى
وَالِدَيَّ وَاَنْ اَعْمَلَ صَالِحًا تَرْضٰيهُ وَاَدْخِلْن۪ي بِرَحْمَتِكَ ف۪ي
عِبَادِكَ الصَّالِح۪ينَ ﴿١٩﴾ وَتَفَقَّدَ الطَّيْرَ فَقَالَ مَا لِيَ لَٓا اَرَى الْهُدْهُدَۘ
اَمْ كَانَ مِنَ الْغَٓائِب۪ينَ ﴿٢٠﴾ لَاُعَذِّبَنَّهُ عَذَابًا شَد۪يدًا اَوْ لَاَذْبَحَنَّهُٓ
اَوْ لَيَأْتِيَنّ۪ي بِسُلْطَانٍ مُب۪ينٍ ﴿٢١﴾ فَمَكَثَ غَيْرَ بَع۪يدٍ فَقَالَ
اَحَطْتُ بِمَا لَمْ تُحِطْ بِه۪ وَجِئْتُكَ مِنْ سَبَاٍ بِنَبَاٍ يَق۪ينٍ ﴿٢٢﴾

**14-** Wan ji ber zilm û quretiya xwe mucîze înkar kirin, hal ev e ku wan ji qinyata dilê xwe bawer kiriye ku ev (mucîze rast û) heq in. De tu binêre encama mufsidan ka çawa bû!

**15-** Sond be, me zanîn daye Dawud û (kurê wî) Suleyman. Her duyan got: Hemd ji Xwedê re be ku em di ser gelek bendeyên xwe yên bawermend re girtine.

**16-** Suleyman (di pêxemberî û zanînê) de bû mîratgirê Dawud. Suleyman got: Gelî mirovan! Zimanê teyran li me hatiye fêrkirin û ji her tiştî (nesîbê) me hatiye dayîn. Bêguman ev dayîn, teqez ew kerema mezin a aşkera ye.

**17-** Ji xizmeta Suleyman re leşkerên wî yên ku ji cin, însan û teyran pêkhatî, pêkve hatin civandin. Vêca ew tev (ji aliyê Suleyman ve) bi awayekî rêkûpêkbûyî dihatin berkarkirin.

**18-** Heta ku hatin newala mîroyan, mîroyek got: Gelî mîroyan! Bikevin kunên xwe; bila Suleyman û leşkerên wî bêhay we nepelçiqînin!

**19-** Vêca Suleyman bi gotina mîroyê keniya û got: Xwedayê min! Sirûşê bide dilê min ji bo ku ez spasiya van nimetên ku te ew li min û dêbavê min kirine, bikim û ez karê qenc ê ku te qayîl dike bikim û bi rehma xwe min bixe nava evdên xwe yên qencîkar.

**20-** Suleyman piştî çavê xwe li teyran gerand got: Çima ez hudhud (li vir) nabînim? Ma ew ne hazir e?!

**21-** Sond be, ez ê ezabekî cansoj bidim hudhud, an ez ê wî şerjê bikim an jî ewê delîleke aşkera û bihêz ji min re bîne?

**22-** Hê demeke dirêj nebihurî, hudhud hat, got: Ez fêrî tiştekî bûm ku tu jî nizanî. Min ji Sebeyê xebereke rast (û girîng) ji te re aniye.

إِنِّي وَجَدْتُ امْرَاَةً تَمْلِكُهُمْ وَاُوتِيَتْ مِنْ كُلِّ شَيْءٍ وَلَهَا عَرْشٌ
عَظِيمٌ ﴿٢٣﴾ وَجَدْتُهَا وَقَوْمَهَا يَسْجُدُونَ لِلشَّمْسِ مِنْ دُونِ اللّٰهِ
وَزَيَّنَ لَهُمُ الشَّيْطَانُ اَعْمَالَهُمْ فَصَدَّهُمْ عَنِ السَّبِيلِ فَهُمْ لَا يَهْتَدُونَ
﴿٢٤﴾ اَلَّا يَسْجُدُوا لِلّٰهِ الَّذِي يُخْرِجُ الْخَبْءَ فِي السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضِ وَيَعْلَمُ مَا تُخْفُونَ وَمَا تُعْلِنُونَ ﴿٢٥﴾ اَللّٰهُ لَا اِلٰهَ اِلَّا
هُوَ رَبُّ الْعَرْشِ الْعَظِيمِ ﴿٢٦﴾ قَالَ سَنَنْظُرُ اَصَدَقْتَ اَمْ كُنْتَ
مِنَ الْكَاذِبِينَ ﴿٢٧﴾ اِذْهَبْ بِكِتَابِي هٰذَا فَاَلْقِهْ اِلَيْهِمْ ثُمَّ تَوَلَّ
عَنْهُمْ فَانْظُرْ مَاذَا يَرْجِعُونَ ﴿٢٨﴾ قَالَتْ يَا اَيُّهَا الْمَلَؤُا اِنِّي اُلْقِيَ اِلَيَّ
كِتَابٌ كَرِيمٌ ﴿٢٩﴾ اِنَّهُ مِنْ سُلَيْمٰنَ وَاِنَّهُ بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ
﴿٣٠﴾ اَلَّا تَعْلُوا عَلَيَّ وَاْتُونِي مُسْلِمِينَ ﴿٣١﴾ قَالَتْ يَا اَيُّهَا الْمَلَؤُا
اَفْتُونِي فِي اَمْرِي مَا كُنْتُ قَاطِعَةً اَمْرًا حَتّٰى تَشْهَدُونِ ﴿٣٢﴾
قَالُوا نَحْنُ اُولُوا قُوَّةٍ وَاُولُوا بَاْسٍ شَدِيدٍ وَالْاَمْرُ اِلَيْكِ فَانْظُرِي
مَاذَا تَاْمُرِينَ ﴿٣٣﴾ قَالَتْ اِنَّ الْمُلُوكَ اِذَا دَخَلُوا قَرْيَةً اَفْسَدُوهَا
وَجَعَلُوا اَعِزَّةَ اَهْلِهَا اَذِلَّةً وَكَذٰلِكَ يَفْعَلُونَ ﴿٣٤﴾ وَاِنِّي
مُرْسِلَةٌ اِلَيْهِمْ بِهَدِيَّةٍ فَنَاظِرَةٌ بِمَ يَرْجِعُ الْمُرْسَلُونَ ﴿٣٥﴾
فَلَمَّا

23- Bêguman min xanimek (Belqîs) dît ku hukm li wan (sebeiyan) dike û jê re her cure derfet hatine dayîn û textekî wê yî mezin heye.

24- Min ew xanim û gelê wê dît ku ew ji bilî Xwedê ji rojê re îbadet dikin. Şeytan ev karên wan ji wan re xemilandine û ew ji riya rast dane paş, vêca ew bi ser riya rast û durist ve nabin.

25- (Ew ji riya rast dane paş) da ku ji Xwedê re îbadet nekin, ew Xwedayê ku ya li erd û asîmanan veşartî derdixe meydanê û bi ya ku hûn vedişêrin û bi ya ku hûn aşkera jî dikin, dizane.

26- Ellah Teala ew ê ku ji bilî wî tu me'bûdê heq tune ne, Ew xwediyê 'Erşê Mezin e.

27- Suleymanî ji hudhud re got: Em ê binêrin ka te rast gotiye yan jî tu ji derewînan î?

28- Vê nameya min here bide wan, piştre xwe hinekî ji wan bide paş û binêre ka ew ê çi bersivê bidin.

29- (Piştî ku şahbanoya Sebeyê nameya Suleyman wergirt) Got: Gelî giregiran! Ji min re nameyeke girîng û hêja hatiye.

30- Bêguman ev name ji Suleyman hatiye û ew bi navê Xwedayê mihrîvanê dilovîn dest pê dike.

31- (Tê de wiha nivîsiye:) Xwe li ser min mezin nedêrin, li hemberî min ranebin û werin bal min misilman bibin.

32- Belqîsê got: Gelî giregiran! Der barê vê rewşê de bibêjin ka ez çi bikim? Ez ne ew im ku bêyî şêwra we tu biryarê bidim.

33- Giregiran got: Em mirovên xwedanhêz û desthelat in, di şeran de em mêrxas in; ferman a te ye, vêca binêre ka tu yê çi fermanê bikî.

34- Wê got: Bêguman dema hukimdar dikevin welatekî wî kavil û wêran dikin, ezîzê wî zelîl dikin û karê wan her ev e.

35- Ez ê xelatekê ji wan re bişînim, vêca ez ê binêrim ka qasid dê bi çi vegerin?

فَلَمَّا جَٓاءَ سُلَيْمٰنَ قَالَ اَتُمِدُّونَنِ بِمَالٍ فَمَٓا اٰتٰينِيَ اللّٰهُ خَيْرٌ مِمَّٓا
اٰتٰيكُمْ بَلْ اَنْتُمْ بِهَدِيَّتِكُمْ تَفْرَحُونَ ﴿٣٦﴾ اِرْجِعْ اِلَيْهِمْ فَلَنَأْتِيَنَّهُمْ بِجُنُودٍ
لَا قِبَلَ لَهُمْ بِهَا وَلَنُخْرِجَنَّهُمْ مِنْهَٓا اَذِلَّةً وَهُمْ صَاغِرُونَ ﴿٣٧﴾ قَالَ
يَٓا اَيُّهَا الْمَلَؤُا اَيُّكُمْ يَأْتٖينٖي بِعَرْشِهَا قَبْلَ اَنْ يَأْتُونٖي مُسْلِمٖينَ ﴿٣٨﴾ قَالَ
عِفْرٖيتٌ مِنَ الْجِنِّ اَنَا اٰتٖيكَ بِهٖ قَبْلَ اَنْ تَقُومَ مِنْ مَقَامِكَ وَاِنّٖي
عَلَيْهِ لَقَوِيٌّ اَمٖينٌ ﴿٣٩﴾ قَالَ الَّذٖي عِنْدَهُ عِلْمٌ مِنَ الْكِتَابِ اَنَا اٰتٖيكَ
بِهٖ قَبْلَ اَنْ يَرْتَدَّ اِلَيْكَ طَرْفُكَ فَلَمَّا رَاٰهُ مُسْتَقِرًّا عِنْدَهُ قَالَ هٰذَا مِنْ
فَضْلِ رَبّٖي لِيَبْلُوَنٖٓي ءَاَشْكُرُ اَمْ اَكْفُرُ وَمَنْ شَكَرَ فَاِنَّمَا يَشْكُرُ
لِنَفْسِهٖ وَمَنْ كَفَرَ فَاِنَّ رَبّٖي غَنِيٌّ كَرٖيمٌ ﴿٤٠﴾ قَالَ نَكِّرُوا لَهَا عَرْشَهَا
نَنْظُرْ اَتَهْتَدٖٓي اَمْ تَكُونُ مِنَ الَّذٖينَ لَا يَهْتَدُونَ ﴿٤١﴾ فَلَمَّا جَٓاءَتْ
قٖيلَ اَهٰكَذَا عَرْشُكِ قَالَتْ كَاَنَّهُ هُوَ وَاُوتٖينَا الْعِلْمَ مِنْ قَبْلِهَا وَكُنَّا
مُسْلِمٖينَ ﴿٤٢﴾ وَصَدَّهَا مَا كَانَتْ تَعْبُدُ مِنْ دُونِ اللّٰهِ اِنَّهَا كَانَتْ مِنْ
قَوْمٍ كَافِرٖينَ ﴿٤٣﴾ قٖيلَ لَهَا ادْخُلِي الصَّرْحَ فَلَمَّا رَاَتْهُ حَسِبَتْهُ لُجَّةً
وَكَشَفَتْ عَنْ سَاقَيْهَا قَالَ اِنَّهُ صَرْحٌ مُمَرَّدٌ مِنْ قَوَارٖيرَ قَالَتْ
رَبِّ اِنّٖي ظَلَمْتُ نَفْسٖي وَاَسْلَمْتُ مَعَ سُلَيْمٰنَ لِلّٰهِ رَبِّ الْعَالَمٖينَ ﴿٤٤﴾

36- Vêca dema (qasid bi xelatên xwe ve) hatin cem Suleyman; got: Ma hûn dixwazin bi mal min qayîl bikin (da ku ez dev ji we berdim)? Xwedê ya ku daye min ji ya daye we çêtir e. Belkî hûn in ew ên ku bi diyariyan dilşad dibin.

37- (Suleyman ji qasidê sebeîyan re got:) Li wan vegere (û ji wan re bibêje), em ê bi leşkerakî wisa bêne ser wan ku nikarin xwe li ber wan bigirin û teqez em ê wan di halekî şerpeze û reben de ji wê derê derxin!

38- (Suleyman) got: Gelî giregiran! Beriya ew bên radestî ber min bibin kî ji we dikare textê wê ji min re bîne?

39- Îfrîtekî cinî got: Beriya tu ji vî cihê xwe rabî, ez ê textê wê ji te re bînim. Hêza min ji vî karî re heye û ez bi xwe bawer im.

40- Ew ê ku ji kitêbê li cem wî zanîn hebû, got: Beriya tu çavê xwe bigirî û vekî, ez ê textê wê ji te re bînim. Vêca dema Suleyman textê wê li ber xwe hazir dît, got: Ev ji kerema Xwedayê min e, da ku min biceribîne, daye min; ka ez ê spasiya wî bikim an jî nankoriyê bikim. Kî şukrê Xwedê bike, teqez feyda wî her jê re ye. Kî jî nankoriyê bike bêguman pêdiviya Xwedayê min bi şukrê wî tun e, Ew jê bêminet û ew xwedankerem e.

41- Suleyman got: Textê wê biguherînin bixin haletekî ku nas neke, em ê binêrin ka wê nas bike yan jî wê bibe ji wan ên ku nas nake?

42- Vêca (Belqîs) dema hat jê re gotin: Ma textê te jî wiha ye? Got: Her wekî ew bi xwe ye! Jixwe beriya vê (mucîzeyê der barê pêxembertiya te de) zanîn ji me re hatiye dayîn û em ji te re teslîm bûn.

43- Ew me'bûdê wê yî ji bilî Xwedê ew ji baweriya dînê tewhîdê dabû paş. Bêguman ew ji nav qewmekî kafir bû.

44- Jê re gotin: Kerem bike here koşkê. Dema Belqîsê koşk dît, wê ew aveke kûr guman kir û daw û delingên xwe hildan (da ku tê re derbas bibe). Suleyman got: Ev, koşkeke hilû ye ji şûşan hatiye çêkirin. Belqîsê got: Xwedayê min! Bêguman min (bi rojperestiyê) zilm li xwe kiriye. Ez digel Suleyman ji Xwedayê alemê Ellah Teala re berdest bûm.

وَلَقَدْ اَرْسَلْنَٓا اِلٰى ثَمُودَ اَخَاهُمْ صَالِحًا اَنِ اعْبُدُوا اللّٰهَ
فَاِذَا هُمْ فَرِيقَانِ يَخْتَصِمُونَ ﴿٤٥﴾ قَالَ يَا قَوْمِ لِمَ تَسْتَعْجِلُونَ
بِالسَّيِّئَةِ قَبْلَ الْحَسَنَةِ لَوْلَا تَسْتَغْفِرُونَ اللّٰهَ لَعَلَّكُمْ
تُرْحَمُونَ ﴿٤٦﴾ قَالُوا اطَّيَّرْنَا بِكَ وَبِمَنْ مَعَكَ قَالَ
طَٓائِرُكُمْ عِنْدَ اللّٰهِ بَلْ اَنْتُمْ قَوْمٌ تُفْتَنُونَ ﴿٤٧﴾ وَكَانَ
فِي الْمَدِينَةِ تِسْعَةُ رَهْطٍ يُفْسِدُونَ فِي الْاَرْضِ
وَلَا يُصْلِحُونَ ﴿٤٨﴾ قَالُوا تَقَاسَمُوا بِاللّٰهِ لَنُبَيِّتَنَّهُ وَاَهْلَهُ ثُمَّ
لَنَقُولَنَّ لِوَلِيِّهٖ مَا شَهِدْنَا مَهْلِكَ اَهْلِهٖ وَاِنَّا لَصَادِقُونَ ﴿٤٩﴾
وَمَكَرُوا مَكْرًا وَمَكَرْنَا مَكْرًا وَهُمْ لَا يَشْعُرُونَ ﴿٥٠﴾
فَانْظُرْ كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ مَكْرِهِمْ اَنَّا دَمَّرْنَاهُمْ وَقَوْمَهُمْ
اَجْمَعِينَ ﴿٥١﴾ فَتِلْكَ بُيُوتُهُمْ خَاوِيَةً بِمَا ظَلَمُوا اِنَّ فِي
ذٰلِكَ لَاٰيَةً لِقَوْمٍ يَعْلَمُونَ ﴿٥٢﴾ وَاَنْجَيْنَا الَّذِينَ اٰمَنُوا
وَكَانُوا يَتَّقُونَ ﴿٥٣﴾ وَلُوطًا اِذْ قَالَ لِقَوْمِهٖٓ اَتَأْتُونَ
الْفَاحِشَةَ وَاَنْتُمْ تُبْصِرُونَ ﴿٥٤﴾ اَئِنَّكُمْ لَتَأْتُونَ الرِّجَالَ
شَهْوَةً مِنْ دُونِ النِّسَٓاءِ بَلْ اَنْتُمْ قَوْمٌ تَجْهَلُونَ ﴿٥٥﴾

فَمَا

**45-** Sond be, me ji gelê Semûd re birayê wan Salih, bi pêxemberî şand (da ku ji wan re bibêje:) Evdîtiyê ji Ellah Teala re bikin! Vêca di cih de ew bûne du bend û bi hev ketin. (Bendekê bawerî anî û benda din înkar kir).

**46-** (Salih ji mandelkaran re) got: Gelî miletê min! Hûn çima beriya qenciyê li neqenciyê lezê dikin? De ji Xwedê Teala lêborîna gunehên xwe bixwazin da ku rehm li we were kirin.

**47-** Qewmê wî got: Di rûyê te û yên digel te de bêqudoşî (bêoxirî) li me bariyaye. Salih ji wan re got: Tiştê ji başî û nebaşiyê were serê we ew ji cem Xwedê ye. Belkî hûn miletekî wisan e ku hûn bi vê têne ceribandin.

"Teteyur" ya ku di ayetê de derbas bû û me jî maneya bêqudoşî û bêoxirî lê anî, daxwaz ji wê xela ye ku li wan rabûbû. Ev xela-tunetî ji wan re ceza bû. Lewra gava pêxemberî ji Salih (e) re hat bawerî pê neanîn. Xwedê jî xela li wan rakir, ji loma jê re gotin:" Di rûyê te û yên digel te de bêqudoşî li me bariyaye!"

**48-** Di wî bajarî de neh kes hebûn ku wan li ser rûyê erdê gelacî dikir û hîç qencî nedikir.

**49-** (Wan neh kesan) ji hev re gotin: Ji hev re bi Xwedê sond bixwin ku em ê teqez bi şev ji xafil ve biavêjin ser Salih û ehlê wî (û em tevan bikujin), piştre em ê ji xwediyê wî re bêjin: Me kuştina wan bi çav nedîtiye û bi rastî jî em rast dibêjin.

**50-** Wan (ji bo kuştina Salih) dafek veda û Me jî bêyî haya wan jê çêbe (ji bo pûçkirina dafa wan) dafek veda.

**51-** De tu binêre ka encama hîleya wan çawa bûye. Bêguman me ew û qewmên wan pêkve helak kirin!

**52-** Vêca ji ber zilma ku wan kiriye xaniyên wan kavil û vala ne (Xwedê ew helak kirin)! Bêguman di vê de ji bo yên têgihîştî nîşan û îbret hene.

**53-** Me ew ên ku bawerî (bi Salih) anî û xwe (ji şirkê) parastin, xelas kirin.

**54-** Lût di bîr bîne, wê dema ji gelê xwe re got: Erê ma hê jî hûn fehşîtiyê dikin û ku hûn dizanin ku ew fehşîtî ye?

**55-** (Piştî vê hişyarkirina îlahî) ma hê jî hûn di şûna jinan de bi şehwetî diçin bal mêran? Nexêr, belkî hûn qewmekî wisan in ku mafê Xwedê yê li ser xwe nizanin!

فَمَاكَانَ جَوَابَ قَوْمِهٖٓ اِلَّٓا اَنْ قَالُٓوا اَخْرِجُٓوا اٰلَ لُوطٍ
مِنْ قَرْيَتِكُمْۚ اِنَّهُمْ اُنَاسٌ يَتَطَهَّرُونَ ﴿٥٦﴾ فَاَنْجَيْنَاهُ وَاَهْلَهُٓ
اِلَّا امْرَاَتَهُۘ قَدَّرْنَاهَا مِنَ الْغَابِرِينَ ﴿٥٧﴾ وَاَمْطَرْنَا عَلَيْهِمْ
مَطَرًاۚ فَسَٓاءَ مَطَرُ الْمُنْذَرِينَ ﴿٥٨﴾ قُلِ الْحَمْدُ لِلّٰهِ وَسَلَامٌ
عَلٰى عِبَادِهِ الَّذٖينَ اصْطَفٰىۜ آٰللّٰهُ خَيْرٌ اَمَّا يُشْرِكُونَۜ ﴿٥٩﴾
اَمَّنْ خَلَقَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ وَاَنْزَلَ لَكُمْ مِنَ السَّمَٓاءِ
مَٓاءًۚ فَاَنْبَتْنَا بِهٖ حَدَٓائِقَ ذَاتَ بَهْجَةٍۚ مَا كَانَ لَكُمْ اَنْ تُنْبِتُوا
شَجَرَهَاۜ ءَاِلٰهٌ مَعَ اللّٰهِۜ بَلْ هُمْ قَوْمٌ يَعْدِلُونَۜ ﴿٦٠﴾ اَمَّنْ
جَعَلَ الْاَرْضَ قَرَارًا وَجَعَلَ خِلَالَهَٓا اَنْهَارًا وَجَعَلَ لَهَا
رَوَاسِيَ وَجَعَلَ بَيْنَ الْبَحْرَيْنِ حَاجِزًاۜ ءَاِلٰهٌ مَعَ اللّٰهِۜ
بَلْ اَكْثَرُهُمْ لَا يَعْلَمُونَۜ ﴿٦١﴾ اَمَّنْ يُجٖيبُ الْمُضْطَرَّ اِذَا دَعَاهُ
وَيَكْشِفُ السُّٓوءَ وَيَجْعَلُكُمْ خُلَفَٓاءَ الْاَرْضِۜ ءَاِلٰهٌ
مَعَ اللّٰهِۜ قَلٖيلًا مَا تَذَكَّرُونَۜ ﴿٦٢﴾ اَمَّنْ يَهْدٖيكُمْ فٖى
ظُلُمَاتِ الْبَرِّ وَالْبَحْرِ وَمَنْ يُرْسِلُ الرِّيَاحَ بُشْرًا بَيْنَ
يَدَيْ رَحْمَتِهٖۜ ءَاِلٰهٌ مَعَ اللّٰهِۜ تَعَالَى اللّٰهُ عَمَّا يُشْرِكُونَۜ ﴿٦٣﴾

**56**- Bersiva gelê Lût her ev bû: Malbata Lût ji welatê xwe derînin, birastî ew mirovên wisa ne ku xwe (ji lîwatê) paqij didêrin!

**57**- Vêca, Me ew û ehlê wî (ew ên ku pê bawerî anîbûn) rizgar kirin, ji bilî jina wî; me ew gerand ji yên ku di ezabê de mane.

**58**- Me baranek (ji kevirê sincirî) bi ser wan de barand. Vêca ew barana ku bi ser yên hatin hişyarkirin de barî çiqas pîs bû!

**59**- (Ya Muhemmed!) Bibêje: Pesn û şêkirî her ji Xwedê re be û silav li ser bendeyên Xwedê bin, ew ên ku Xwedê ew (ji pêxemberiyê re) hilbijartine. Erê ma Xwedê çêtir e yan ew pûtên ku hûn jê re dikin hevpişk?

**60**- Na! Belkî Xwedê çêtir e, ew ê ku erd û asîman çêkirin û ji ewran av ji we re aniye xwarê. Vêca me bi wê avê baxçeyên xweşik hêşîn kirine ku we nikarîbû darên wan hêşîn bikin. Erê, ma digel Ellah Teala xwedayekî din heye (ku hûn perestina wî dikin)?! (Ne wisan e) belkî ew qewmek e ku berê xwe ji heqiyê vedigerînin (ku ji Xwedê re hevpişkan çêdikin).

**61**- Na! Belkî Ellah Teala çêtir e, ew ê ku erd kiriye şûnwar, di navbera erdê de çem herikandine, ji bo erdê çiyayên mikûm xuliqandine û di nava her du deryayan de navberek vekişandiye (da ku her du nerijin ser hev)? Erê, ma digel Ellah Teala xwedayekî din heye (ku hûn perestina wî dikin)?! Belê pirên wan (rastiyê) nizanin.

**62**- Na! Belkî Ellah Teala çêtir e, ew ê ku dema derddar gazî wî dikin bersiva wan dide, tengiyê ji ser wan radike û we dike şûngir û desthilatên erdê? Erê ma digel Ellah Teala xwedayekî din heye (ku hûn perestina wî dikin)?! Hûn çi qas hindik difikirin!

**63**- Na! Belkî Ellah Teala çêtir e, ew ê ku di nava taristana bej û behrê de rê nîşanî we dide û beriya rehma xwe bayê wek mizgînber dişîne? Erê ma digel Ellah Teala xwedayekî din heye (ku hûn perestina wî dikin)?! Ellah Teala ji wan tiştên ku hûn jê re dikin hevpişk û heval, pak û bilind e!

اَمَّنْ يَبْدَؤُا الْخَلْقَ ثُمَّ يُعِيدُهُ وَمَنْ يَرْزُقُكُمْ مِنَ السَّمَاءِ
وَالْاَرْضِ ءَاِلٰهٌ مَعَ اللّٰهِ قُلْ هَاتُوا بُرْهَانَكُمْ اِنْ كُنْتُمْ صَادِقِينَ
﴿٦٤﴾ قُلْ لَا يَعْلَمُ مَنْ فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ الْغَيْبَ اِلَّا اللّٰهُ
وَمَا يَشْعُرُونَ اَيَّانَ يُبْعَثُونَ ﴿٦٥﴾ بَلِ ادَّارَكَ عِلْمُهُمْ فِي الْاٰخِرَةِ
بَلْ هُمْ فِي شَكٍّ مِنْهَا بَلْ هُمْ مِنْهَا عَمُونَ ﴿٦٦﴾ وَقَالَ الَّذِينَ كَفَرُوا
ءَاِذَا كُنَّا تُرَابًا وَاٰبَاؤُنَا اَئِنَّا لَمُخْرَجُونَ ﴿٦٧﴾ لَقَدْ وُعِدْنَا هٰذَا نَحْنُ
وَاٰبَاؤُنَا مِنْ قَبْلُ اِنْ هٰذَا اِلَّا اَسَاطِيرُ الْاَوَّلِينَ ﴿٦٨﴾ قُلْ سِيرُوا
فِي الْاَرْضِ فَانْظُرُوا كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ الْمُجْرِمِينَ ﴿٦٩﴾
وَلَا تَحْزَنْ عَلَيْهِمْ وَلَا تَكُنْ فِي ضَيْقٍ مِمَّا يَمْكُرُونَ
﴿٧٠﴾ وَيَقُولُونَ مَتٰى هٰذَا الْوَعْدُ اِنْ كُنْتُمْ صَادِقِينَ ﴿٧١﴾ قُلْ عَسٰى
اَنْ يَكُونَ رَدِفَ لَكُمْ بَعْضُ الَّذِي تَسْتَعْجِلُونَ ﴿٧٢﴾ وَاِنَّ رَبَّكَ
لَذُو فَضْلٍ عَلَى النَّاسِ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَهُمْ لَا يَشْكُرُونَ ﴿٧٣﴾ وَاِنَّ
رَبَّكَ لَيَعْلَمُ مَا تُكِنُّ صُدُورُهُمْ وَمَا يُعْلِنُونَ ﴿٧٤﴾ وَمَا مِنْ غَائِبَةٍ
فِي السَّمَاءِ وَالْاَرْضِ اِلَّا فِي كِتَابٍ مُبِينٍ ﴿٧٥﴾ اِنَّ هٰذَا الْقُرْاٰنَ
يَقُصُّ عَلٰى بَنِي اِسْرَائِيلَ اَكْثَرَ الَّذِي هُمْ فِيهِ يَخْتَلِفُونَ ﴿٧٦﴾
وَاِنَّهُ

**64**- Na! Belkî Ellah Teala çêtir e, ew ê ku ji tuneyî diafirîne, piştre (we dimirîne û li qiyametê) ji nû ve dîsa we vedijîne û hem ji asîmên hem jî ji erdê rizqê we dide. Erê ma digel Ellah Teala xwedayekî din heye (ku hûn perestina wî dikin)?! (Ya Muhemmed! Ji mandelkaran re) Bibêje: Eger bi rastî hûn rast dibêjin, de ka delîla xwe bînin!

**65**- Bibêje: Ji bilî Xwedê Teala, yên li erd û asîmanan tu kes ji wan xeybê nizane. Ew nizanin ka kengê dê bêne saxkirin jî.

**66**- Qey zanîna wan gihîştiye axîretê (heta ku pirsa hatina wê jî bikin)? Ne rast e, ew di vê de gumandar in, belkî ew (ji dîtina nîşanên qiyamet û heqiyê) fehmkor in.

**67**- Ew ên ku kafir bûne, gotin: Erê ma çaxê em û bavanên me (mirin û) bûne ax, erê ma dîsa em ê (sax bibin û ji tirban) bêne deranîn?!

**68**- Sond be, ma ne ev gef û tirs li me û ji berê de jî li bavanên me hatibû kirin, ev (qiyamet, xelat û celat) bes çîrok û çîvanokên pêşiyan in.

**69**- Bibêje: De heydê li ser rûyê erdê bigerin, vêca bimêzînin ka dûmahîka gunehkaran çawa bûye!

**70**- Tu ji bo wan xemgîn mebe, ji dafên ku ew li ber te vedidin jî dilteng mebe (lewra em piştgirên te ne).

**71**- (Ew muşrik) dibêjin: Eger bi rastî hûn (di doza xwe de) rastgo ne, ev peyman (a bi ezab) ka kengê tê?

**72**- Bibêje: Ew ezabê ku hûn lezê li hatina wî dikin, hêvî heye ku di nêzîk de hinek jê bi ser we de bê.

**73**- Bêguman Xwedayê te ji mirovan re xwedanê keremê ye, lê belê pirên mirovan wî naşêkirînin.

**74**- Bêguman Xwedayê te bi ya ku ew di sînga xwe de vedişêrin û bi ya ku aşkera jî dikin dizane.

**75**- Li erd û esmên her çi tiştê (ji mirovan re) nediyar, her ew di kitêbeke aşkera de nivîsandî ye.

**76**- Bêguman ev Quran ji israîlîyan re piraniya wan tiştên ku tê de li hev nedikirin û ketibûn îxtîlafê aşkera dike.

وَاِنَّهُ لَهُدًى وَرَحْمَةٌ لِلْمُؤْمِنِينَ ﴿٧٧﴾ اِنَّ رَبَّكَ يَقْضِي بَيْنَهُمْ بِحُكْمِهِ
وَهُوَ الْعَزِيزُ الْعَلِيمُ ﴿٧٨﴾ فَتَوَكَّلْ عَلَى اللّٰهِ اِنَّكَ عَلَى الْحَقِّ الْمُبِينِ
﴿٧٩﴾ اِنَّكَ لَا تُسْمِعُ الْمَوْتٰى وَلَا تُسْمِعُ الصُّمَّ الدُّعَاءَ اِذَا وَلَّوْا مُدْبِرِينَ
﴿٨٠﴾ وَمَا اَنْتَ بِهَادِي الْعُمْيِ عَنْ ضَلَالَتِهِمْ اِنْ تُسْمِعُ اِلَّا مَنْ يُؤْمِنُ
بِاٰيَاتِنَا فَهُمْ مُسْلِمُونَ ﴿٨١﴾ وَاِذَا وَقَعَ الْقَوْلُ عَلَيْهِمْ اَخْرَجْنَا لَهُمْ
دَابَّةً مِنَ الْاَرْضِ تُكَلِّمُهُمْ اَنَّ النَّاسَ كَانُوا بِاٰيَاتِنَا لَا
يُوقِنُونَ ﴿٨٢﴾ وَيَوْمَ نَحْشُرُ مِنْ كُلِّ اُمَّةٍ فَوْجًا مِمَّنْ يُكَذِّبُ
بِاٰيَاتِنَا فَهُمْ يُوزَعُونَ ﴿٨٣﴾ حَتّٰى اِذَا جَاؤُ قَالَ اَكَذَّبْتُمْ بِاٰيَاتِي
وَلَمْ تُحِيطُوا بِهَا عِلْمًا اَمَّاذَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿٨٤﴾ وَوَقَعَ
الْقَوْلُ عَلَيْهِمْ بِمَا ظَلَمُوا فَهُمْ لَا يَنْطِقُونَ ﴿٨٥﴾ اَلَمْ يَرَوْا اَنَّا
جَعَلْنَا الَّيْلَ لِيَسْكُنُوا فِيهِ وَالنَّهَارَ مُبْصِرًا اِنَّ فِي ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ
لِقَوْمٍ يُؤْمِنُونَ ﴿٨٦﴾ وَيَوْمَ يُنْفَخُ فِي الصُّورِ فَفَزِعَ مَنْ فِي السَّمٰوَاتِ
وَمَنْ فِي الْاَرْضِ اِلَّا مَنْ شَاءَ اللّٰهُ وَكُلٌّ اَتَوْهُ دَاخِرِينَ ﴿٨٧﴾
وَتَرَى الْجِبَالَ تَحْسَبُهَا جَامِدَةً وَهِيَ تَمُرُّ مَرَّ السَّحَابِ صُنْعَ
اللّٰهِ الَّذِي اَتْقَنَ كُلَّ شَيْءٍ اِنَّهُ خَبِيرٌ بِمَا تَفْعَلُونَ ﴿٨٨﴾

**77**- Bêguman ev Quran ji bawermendan re rêber û rehmet e.

**78**- Bêguman Xwedayê te, dê di navbera wan de bi hukmê xwe daraz bike û her ew e yê serdest û yê zana.

**79**- Naxwe tu xwe bisipêre Xwedê Teala, bêguman tu li ser wê heqiya aşkera yî (ya ku şik û guman tê de tun e.)

**80**- Bêguman tu nikarî (heqiyê) bi dilmiriyan bidî bihîstin û tu doza xwe bi wan kerên ku pişta xwe dane heqiyê û jê direvin jî, neşê bidî guhdarîkirin.

**81**- Tu neşê fehmkoran ji rêşaşiya wan vegerînî û wan rasterê bikî, bes tu dikarî (doza héq) li yên ku ji dil û can misliman bûne û wan bawerî bi ayetên me aniye, bidî guhdarîkirin.

**82**- Dema hatina qiyametê nêzîkî wan bû, Em ê ji bo wan ji erdê debeyekî (rêveherekî) derînin ku ew ê bi wan re biaxive; 'bêguman însanan bi ayetên Xwedayê me her bawerî neanîbû'.

**83**- Wê rojê em ê ji her umetê birekê ji wan ên ku bi ayetên me bawerî neanîbû li hev bicivînin. Êdî ew li cihekî têne girtin (û ji bo hesêb) têne ajotin.

**84**- Heta ku ew bêne (meydana hesabdanê, vêca ku li hev kom bûn), Xwedê Teala ji wan re dibêje: Erê ma we bawerî bi ayetên min neanî, bêyî ku hûn tişekî jê bizanin û li serê bifikirin, erê ma ew çi bû ku we dikir?

**85**- Ji ber zilma ku kirin, ezab li ser wan misoger bû, vêca ew nikarin biaxivin (da ku bersiva xwe bidin).

**86**- Ma wan nedîtiye ku me şev afirandiye da ku ew tê de bêhna xwe bidin û me roj jî kiriye ronahî (ji bo ku tê de bixebitin)? Ji bo miletekî ku bawerî bîne, teqez di vê de îbret hene (ku aqil û ders jê bêne wergirtin).

**87**- Roja di sûrê de were pifkirin, ji bilî yên ku Xwedê naxwestiye ku bitirsin, çi tiştên li erd û asîmanan hene dê bitirsin. Tevekî mexlûqan dê melûl û şikestî bêne hizûra Xwedê.

**88**- Tu guman dikî ku çiya rawestayî û bêhereket in. Ne wisan e, ew mîna gera ewran digerin. Ev pîşê Xwedê Teala ye, ew Xwedayê ku her tişt tekûz û bihîkmet çêkiriye. Bêguman Xwedê Teala, ji kirinên we agahdar e.

مَنْ جَاءَ بِالْحَسَنَةِ فَلَهُ خَيْرٌ مِنْهَا وَهُمْ مِنْ فَزَعٍ يَوْمَئِذٍ اٰمِنُونَ
٨٩ وَمَنْ جَاءَ بِالسَّيِّئَةِ فَكُبَّتْ وُجُوهُهُمْ فِي النَّارِ هَلْ تُجْزَوْنَ
اِلَّا مَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ٩٠ اِنَّمَا اُمِرْتُ اَنْ اَعْبُدَ رَبَّ هٰذِهِ الْبَلْدَةِ
الَّذِي حَرَّمَهَا وَلَهُ كُلُّ شَيْءٍ وَاُمِرْتُ اَنْ اَكُونَ مِنَ الْمُسْلِمِينَ
٩١ وَاَنْ اَتْلُوَا الْقُرْاٰنَ فَمَنِ اهْتَدٰى فَاِنَّمَا يَهْتَدِي لِنَفْسِهِ وَمَنْ
ضَلَّ فَقُلْ اِنَّمَا اَنَا مِنَ الْمُنْذِرِينَ ٩٢ وَقُلِ الْحَمْدُ لِلّٰهِ سَيُرِيكُمْ
اٰيَاتِهِ فَتَعْرِفُونَهَا وَمَا رَبُّكَ بِغَافِلٍ عَمَّا تَعْمَلُونَ ٩٣




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

طٰسٓمٓ ١ تِلْكَ اٰيَاتُ الْكِتَابِ الْمُبِينِ ٢ نَتْلُوا عَلَيْكَ مِنْ نَبَاِ مُوسٰى
وَفِرْعَوْنَ بِالْحَقِّ لِقَوْمٍ يُؤْمِنُونَ ٣ اِنَّ فِرْعَوْنَ عَلَا فِي الْاَرْضِ
وَجَعَلَ اَهْلَهَا شِيَعًا يَسْتَضْعِفُ طَائِفَةً مِنْهُمْ يُذَبِّحُ اَبْنَاءَهُمْ وَيَسْتَحْيِي
نِسَاءَهُمْ اِنَّهُ كَانَ مِنَ الْمُفْسِدِينَ ٤ وَنُرِيدُ اَنْ نَمُنَّ عَلَى الَّذِينَ
اسْتُضْعِفُوا فِي الْاَرْضِ وَنَجْعَلَهُمْ اَئِمَّةً وَنَجْعَلَهُمُ الْوَارِثِينَ ٥

وَنُمَكِّنَ

**89**- Kî ku îmandar, muwehhîd û biîbadet were hizûra Xwedê Teala, vêca ya herî çêtir jê re heye (ku bihişt e) û wê roja bitirs ew ji tirseke mezin jî ewle ne.

**90**- Kî ku bi kar û kiryarên nebaş werê hizûra Xwedê Teala, ew bi ser devên xwe ve di êgir têne werkirin (û ji wan re tê gotin:) Hûn bes cezayê ya ku we li dinyayê kiriye, dikişînin!

**91**-(Ya Muhemmed! Bibêje:) Ferman li min hatiye kirin ku ez bes ji Perwerdegarê vî bajarî re (ku Mekke ye) îbadet bikim. Ew Xwedayê ku siyanet dayê (û ew hemandiye), her tişt bes yê wî ye û ferman li min hatiye kirin ku ez misliman bijîm û misliman bimirim.

**92**- Ez hatime fermanberkirin ku ez Quranê bixwînim. Vêca kî were ser riya rast, ew ji bo xwe hatiye ser riya rast û kî ku ji rê bikeve, îcar jê re bibêje: Ez bes pêxemberek ji pêxemberên hişyarker im.

**93**- Bibêje: Hemd ji bo Xwedê Teala ye. Ew Xwedayê ku ayetên xwe (di nefsa we de û di erd û asîmanan de) dê nîşanî we bide, hûn ê wan nas bikin (naskirineke ku li ser rastiyê we rasterê bike). Bêguman Xwedayê te ji tişê ku ew dikin, ne bêhay e.

## SÛREYÊ QESES

Sûreyê Qeses, 88 (heştê û heşt) ayet e. Li Mekkê daketiye. El-Qeses bi maneya rûdan, qise û hîkayeyan e. Sûreyî navê xwe ji ayeta 25-em girtiye. Mijarên sûreyî yên serekeyî ji zarokatiya wî û pê de jiyana Nebî Mûsa, têkoşîna wî, serkeftina ehlê îmanê û bawernebûna bi serweta dinyayê pêk tên.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

**1- Ta. Sîn. Mîm.**

**2**- Ev ayetên kitêba ronker in.

**3**- (Ya Muhemmed!) Ji bo miletekî ku bawer bikin (bi awayekî ku feyde bide) em ê ji te re hinekî ji agahiyên Mûsa û Firewn bi rastî û duristî bixwînin.

**4**- Bêguman Firewn li ser erdê di ser xwe ve çûye û xelkên wê kirine parçe parçe. Desteyekê ji wan qels dike; kurên wan dikuje û keçên wan (bo xizmetê) sax dihêle. Bêguman ew her ji mufsidan bû.

**5**- Em jî dixwazin li wan ên ku li ser erdê hatine qelskirin keremê bikin û em wan bikin rêber û em wan bikin mîratgirê erdê.

وَنُمَكِّنَ لَهُمْ فِى الْاَرْضِ وَنُرِىَ فِرْعَوْنَ وَهَامَانَ
وَجُنُودَهُمَا مِنْهُمْ مَا كَانُوا يَحْذَرُونَ ﴿٦﴾ وَاَوْحَيْنَا اِلٰى اُمِّ
مُوسٰى اَنْ اَرْضِعِيهِ فَاِذَا خِفْتِ عَلَيْهِ فَاَلْقِيهِ فِى الْيَمِّ وَلَا
تَخَافِى وَلَا تَحْزَنِى اِنَّا رَادُّوهُ اِلَيْكِ وَجَاعِلُوهُ مِنَ الْمُرْسَلِينَ
﴿٧﴾ فَالْتَقَطَهُ اٰلُ فِرْعَوْنَ لِيَكُونَ لَهُمْ عَدُوًّا وَحَزَنًا اِنَّ
فِرْعَوْنَ وَهَامَانَ وَجُنُودَهُمَا كَانُوا خَاطِئِينَ ﴿٨﴾ وَقَالَتِ
امْرَاَتُ فِرْعَوْنَ قُرَّتُ عَيْنٍ لِى وَلَكَ لَا تَقْتُلُوهُ عَسٰى اَنْ
يَنْفَعَنَا اَوْ نَتَّخِذَهُ وَلَدًا وَهُمْ لَا يَشْعُرُونَ ﴿٩﴾ وَاَصْبَحَ
فُؤَادُ اُمِّ مُوسٰى فَارِغًا اِنْ كَادَتْ لَتُبْدِى بِهِ لَوْلَا اَنْ
رَبَطْنَا عَلٰى قَلْبِهَا لِتَكُونَ مِنَ الْمُؤْمِنِينَ ﴿١٠﴾ وَقَالَتْ لِاُخْتِهِ
قُصِّيهِ فَبَصُرَتْ بِهِ عَنْ جُنُبٍ وَهُمْ لَا يَشْعُرُونَ ﴿١١﴾
وَحَرَّمْنَا عَلَيْهِ الْمَرَاضِعَ مِنْ قَبْلُ فَقَالَتْ هَلْ اَدُلُّكُمْ
عَلٰى اَهْلِ بَيْتٍ يَكْفُلُونَهُ لَكُمْ وَهُمْ لَهُ نَاصِحُونَ ﴿١٢﴾
فَرَدَدْنَاهُ اِلٰى اُمِّهِ كَىْ تَقَرَّ عَيْنُهَا وَلَا تَحْزَنَ وَلِتَعْلَمَ
اَنَّ وَعْدَ اللّٰهِ حَقٌّ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَهُمْ لَا يَعْلَمُونَ ﴿١٣﴾

**6**- Em divên wan li erdê desthilatdar bikin û em bi Firewn, Haman û leşkerên wan a ku ew jê ditirsiyan, bidin dîtin.

**7**- (Dema Mûsa ji dayîka xwe bû) Me sirûş (îlham) da dayîka Mûsa, (Me jê re got) wî bimêjîne (şîr bide). Vêca eger tu jê tirsiya (ku were kuştin mîna zarokên îsraîliyan) îcar wî (bike sindoqê û) biavêje deryayê (çemê Nîlê). Netirse (ew naxeniqe) û xemgîn jî mebe. Bêguman em ê dîsa wî li te vegerînin û em ê wî bikin pêxember.

**8**- Êdî mala Firewn ew ji avê derxist da ku (pê dilxweş bibin, ji xwe re bikin kur û di domahîkê de) ji wan re bibe neyar û kovan. Bêguman Firewn, Haman û leşkerên wan her gunehkar bûn.

**9**- Jina Firewn (gava Mûsa dît, kete dilê wê û jê re) got: (Ev zarok) dê ji bo min û te bibe kêf û dilxweşî, wî mekujin, dibe ku feydeya wî bide me, yan jî em wî ji xwe re bi kurînî bigirin. Hal ev e ku ew nizanin (ku helaka wan dê li ser destê wî be).

**10**- Dayîka Mûsa (piştî bihîst ku Mûsa ketiye destê Firewn) tu hizir û xem li ser dilê wê nema ji bilî xema Mûsa (ka gelo çi bi serî wî hat). Eger me dilê wê mikûm nekiribûya hindik mabû ew aşkera bike ku ew kurê wê ye. (Vêca wê sebir kêşa û negot) da ku ew bibe ji bawermendan.

**11**- Dayîka Mûsa ji xwişka wî re got: Li pey şopa wî here (ka çi dibe). Wê ew ji dûr ve dît, wan nizanî ew xwişka wî ye (ku li dûv hatiye).

**12**- Beriya (ew li dayîka xwe vegere) Me nehêla ew şîrê şîrdayiyan bixwe. Vêca (piştî zanî ew li dayîkan digerin, xwişka wî ji wan re) got: Ma ez malekê nîşanî we bidim ku wî ji we re xwedî bikin û ew lê guhdar bin?

**13**- Vêca me ew li dayîka wî vegerand da ku çavê wê pê ronî bibe, xem naxwe û zanibe ku peymana Xwedê Teala (dayî) heq û rast e. Lê belê pirên mirovan (vê) nizanin.

وَلَمَّا بَلَغَ اَشُدَّهُ وَاسْتَوٰى اٰتَيْنَاهُ حُكْمًا وَعِلْمًاۜ وَكَذٰلِكَ
نَجْزِي الْمُحْسِنِينَ ﴿١٤﴾ وَدَخَلَ الْمَدِينَةَ عَلٰى حِينِ غَفْلَةٍ مِنْ اَهْلِهَا
فَوَجَدَ فِيهَا رَجُلَيْنِ يَقْتَتِلَانِۘ هٰذَا مِنْ شِيعَتِهِ وَهٰذَا مِنْ عَدُوِّهِۚ
فَاسْتَغَاثَهُ الَّذِي مِنْ شِيعَتِهِ عَلَى الَّذِي مِنْ عَدُوِّهِۙ فَوَكَزَهُ مُوسٰى
فَقَضٰى عَلَيْهِۘ قَالَ هٰذَا مِنْ عَمَلِ الشَّيْطَانِۜ اِنَّهُ عَدُوٌّ مُضِلٌّ مُبِينٌ
﴿١٥﴾ قَالَ رَبِّ اِنِّي ظَلَمْتُ نَفْسِي فَاغْفِرْ لِي فَغَفَرَ لَهُۜ اِنَّهُ هُوَ الْغَفُورُ
الرَّحِيمُ ﴿١٦﴾ قَالَ رَبِّ بِمَا اَنْعَمْتَ عَلَيَّ فَلَنْ اَكُونَ ظَهِيرًا لِلْمُجْرِمِينَ
﴿١٧﴾ فَاَصْبَحَ فِي الْمَدِينَةِ خَائِفًا يَتَرَقَّبُ فَاِذَا الَّذِي اسْتَنْصَرَهُ
بِالْاَمْسِ يَسْتَصْرِخُهُۜ قَالَ لَهُ مُوسٰى اِنَّكَ لَغَوِيٌّ مُبِينٌ ﴿١٨﴾ فَلَمَّا
اَنْ اَرَادَ اَنْ يَبْطِشَ بِالَّذِي هُوَ عَدُوٌّ لَهُمَاۙ قَالَ يَا مُوسٰى اَتُرِيدُ
اَنْ تَقْتُلَنِي كَمَا قَتَلْتَ نَفْسًا بِالْاَمْسِۗ اِنْ تُرِيدُ اِلَّا اَنْ تَكُونَ
جَبَّارًا فِي الْاَرْضِ وَمَا تُرِيدُ اَنْ تَكُونَ مِنَ الْمُصْلِحِينَ ﴿١٩﴾ وَجَاءَ
رَجُلٌ مِنْ اَقْصَا الْمَدِينَةِ يَسْعٰىۘ قَالَ يَا مُوسٰى اِنَّ الْمَلَاَ
يَاْتَمِرُونَ بِكَ لِيَقْتُلُوكَ فَاخْرُجْ اِنِّي لَكَ مِنَ النَّاصِحِينَ ﴿٢٠﴾ فَخَرَجَ
مِنْهَا خَائِفًا يَتَرَقَّبُۘ قَالَ رَبِّ نَجِّنِي مِنَ الْقَوْمِ الظَّالِمِينَۚ ﴿٢١﴾

وَلَمَّا

**14**- Dema Mûsa (ji hêz û aqil ve) giha kemala xwe, Me pêxemberî û zanîn dayê. Ha bi vî awayî em qencîkaran xelat dikin.

**15**- Mûsa di navberekê de ku haya xelkê bajêr jê nebû, çû bajêr. Li wê derê dît ku du zilam şer dikin. Yek ji wan ji qewmê wî (îsraîlî) bû û ew ê din jî ji neyarê wî (qibtî) bû. Vêca zilamê ji qewmê wî hawara xwe gihandê da ku li hemberî dijminê wî arîkariya wî bike. Vêca Mûsa jî kulmek lê da, êdî ew kuşt. (Mûsa) got: Ev (kuştin), ji karê şeytên e. Bêguman ew (ji bo zuriyeta Adem) neyar û rêşaşkerekî aşkera ye.

**16**- Mûsa (poşman bû û) got: Xwedayê min! Bêguman min li xwe bi xwe zilim kiriye. Li min bibore û gunehên min jê bibe! Êdî Xwedê jî gunehê wî jê bir. Bêguman Xwedê gunehjêbir û dilovîn e.

**17**- Mûsa got: Xwedayê min! Ji ber wê kerema te li min kirî (ku te ez bexşandim) êdî ez ê ji sûckeran re nebim piştek û arîkar.

**18**- Êdî Mûsa, di nav bajêr de bi tirs dima, çavdêrî li xwe dikir (da ku ji ber kuştina mirovê Firewn tiştek neyê serê wî). Ji nişka ve dît ew ê ku duh arîkarî jê xwestî, dîsa hawara xwe digihînê. Mûsa jê re got: Bêguman tu rêşaşkerekî aşkera yî!

**19**- Çi dema Mûsa xwest wî zilamê (qibtî) ku dijminê her duyan (yê Mûsa û yê îsraîlî) bû bi xurtî bigire, (îsraîlî) got: Ey Mûsa! Tu dixwazî min jî bikujî her wekî te duh yek kuşt? Bes dixwazî tu bibî zordarekî xwinrêj û tu naxwazî bibî ji navbeynkaran?!

**20**- Zilamek (ji firewniyan ku bawerî bi Mûsa anîbû) ji domahîka bajêr bi lez hate cem Mûsa û got: Ey Mûsa! Giregir der barê te de ray û şêwrê dikin da ku te bikujin, vêca (ji bajêr) derkeve û bêguman ez xêra te dixwazim.

**21**- Êdî Mûsa bi tirs û saw ji bajêr derket, li xwe çavnêrî dikir û got: Xwedayê min! Min ji vê civata zalim rizgar bike.

وَلَمَّا تَوَجَّهَ تِلْقَٓاءَ مَدْيَنَ قَالَ عَسٰى رَبّ۪ٓي اَنْ يَهْدِيَن۪ي سَوَٓاءَ
السَّب۪يلِ ﴿٢٢﴾ وَلَمَّا وَرَدَ مَٓاءَ مَدْيَنَ وَجَدَ عَلَيْهِ اُمَّةً مِنَ
النَّاسِ يَسْقُونَ وَوَجَدَ مِنْ دُونِهِمُ امْرَاَتَيْنِ تَذُودَانِ قَالَ
مَا خَطْبُكُمَا قَالَتَا لَا نَسْق۪ي حَتّٰى يُصْدِرَ الرِّعَٓاءُ وَاَبُونَا
شَيْخٌ كَب۪يرٌ ﴿٢٣﴾ فَسَقٰى لَهُمَا ثُمَّ تَوَلّٰٓى اِلَى الظِّلِّ فَقَالَ
رَبِّ اِنّ۪ي لِمَٓا اَنْزَلْتَ اِلَيَّ مِنْ خَيْرٍ فَق۪يرٌ ﴿٢٤﴾ فَجَٓاءَتْهُ اِحْدٰيهُمَا
تَمْش۪ي عَلَى اسْتِحْيَٓاءٍ قَالَتْ اِنَّ اَب۪ي يَدْعُوكَ لِيَجْزِيَكَ اَجْرَ مَا
سَقَيْتَ لَنَا فَلَمَّا جَٓاءَهُ وَقَصَّ عَلَيْهِ الْقَصَصَ قَالَ لَا تَخَفْ
نَجَوْتَ مِنَ الْقَوْمِ الظَّالِم۪ينَ ﴿٢٥﴾ قَالَتْ اِحْدٰيهُمَا يَٓا اَبَتِ
اسْتَأْجِرْهُ اِنَّ خَيْرَ مَنِ اسْتَأْجَرْتَ الْقَوِيُّ الْاَم۪ينُ ﴿٢٦﴾
قَالَ اِنّ۪ٓي اُر۪يدُ اَنْ اُنْكِحَكَ اِحْدَى ابْنَتَيَّ هَاتَيْنِ عَلٰٓى
اَنْ تَأْجُرَن۪ي ثَمَانِيَ حِجَجٍ فَاِنْ اَتْمَمْتَ عَشْرًا فَمِنْ عِنْدِكَ
وَمَٓا اُر۪يدُ اَنْ اَشُقَّ عَلَيْكَ سَتَجِدُن۪ٓي اِنْ شَٓاءَ اللّٰهُ مِنَ
الصَّالِح۪ينَ ﴿٢٧﴾ قَالَ ذٰلِكَ بَيْن۪ي وَبَيْنَكَ اَيَّمَا الْاَجَلَيْنِ
قَضَيْتُ فَلَا عُدْوَانَ عَلَيَّ وَاللّٰهُ عَلٰى مَا نَقُولُ وَك۪يلٌ ﴿٢٨﴾

22- Dema Mûsa berê xwe da rexê Medyenê (bajarê nebî Şûeyb) got: Ez hêvîdar im ku Xwedayê min berê min bide riya rast (û min ji rê nexe).

23- Vêca wextê gihîşt ser ava Medyenê, li ser avê birek mirov dîtin ku wan pezên xwe av didan. Ji bilî wan jî (di bin wan re) du jin dîtin ku wan pezên xwe didan paş (da ku nekevin nav yên xelkê). Mûsa (ji wan re) got: We xêr e, ji bo çi hûn pezên xwe didin paş? Gotin: Heta ku şivan (pezên xwe av nedin û) xwe nedin paş, em (xwe naxin nava wan û pezên xwe) av nadin; bavê me jî kalekî pîr e (ji wî pêştir kesekî me nîn e, ji neçarî em hatine ber pêz).

24- Êdî Mûsa (pezên) wan av da, dûvre pişta xwe da wan, çû ber siyê û wiha dua kir: Xwedayê min! Ez muhtacê qenciyekê me tu ji bo min bişînî.

Ew çend roj bû ku zad di qirika Mûsa re neçûbû xwar, ketibû rewşeke wiha zehmet ku çi biketa destê wî dê bixwara û kê çi bida wî, dê qebûl bikira û bi vê gotina xwe li ber Rebbê xwe digeriya ku zadekî bike qismetê wî.

25- Paşê yek ji her duyan bi heya û edeb hate cem Mûsa, jê re got: Bavê min gazî te dike, da ku heqê te bide te, ji ber ku te pezê me av dabû. Vêca dema Mûsa hate cem Şûeyb û serpêhatiya xwe jê re got, Şûeyb got: Metirse, tu ji wî miletê sitemkar xelas bûyî.

26- Ji wan her du keçan yekê got: Bavo! wî bi şivanî bigire, bêguman ew çêtirîn kes e ku tu bi şivanî bigirî, ew xurt û emîn e.

27- Şûeyb ji Mûsa re got: Ez dixwazim ji van her du keçên xwe yekê li te mehr bikim, bi şertê ku tu heşt salan li bal min bi şivanî bimînî. Eger tu deh salan temam bikî ew qenciyeke ji cem te ye û ez naxwazim ji te re zehmetiyê çêkim. Xwedê hez bike tu yê min mirovekî qencîkar bibînî.

28- Mûsa got: Ev di neqeba min û te de ye. Ez ji van her du qewlan (heşt sal an deh sal) kîjanî temam bikim, zêdeyî ji min nayê xwestin. Ellah Teala li ser qewlê me şahid e.

فَلَمَّا قَضٰى مُوسَى الْاَجَلَ وَسَارَ بِاَهْلِه۪ٓ اٰنَسَ مِنْ جَانِبِ الطُّورِ
نَارًاۚ قَالَ لِاَهْلِهِ امْكُثُوٓا اِنّ۪ٓي اٰنَسْتُ نَارًا لَعَلّ۪ٓي اٰت۪يكُمْ
مِنْهَا بِخَبَرٍ اَوْ جَذْوَةٍ مِنَ النَّارِ لَعَلَّكُمْ تَصْطَلُونَ ﴿٢٩﴾ فَلَمَّٓا
اَتٰيهَا نُودِيَ مِنْ شَاطِئِ الْوَادِ الْاَيْمَنِ فِي الْبُقْعَةِ الْمُبَارَكَةِ
مِنَ الشَّجَرَةِ اَنْ يَا مُوسٰٓى اِنّ۪ٓي اَنَا اللّٰهُ رَبُّ الْعَالَم۪ينَۙ
﴿٣٠﴾ وَاَنْ اَلْقِ عَصَاكَۜ فَلَمَّا رَاٰهَا تَهْتَزُّ كَاَنَّهَا جَٓانٌّ وَلّٰى
مُدْبِرًا وَلَمْ يُعَقِّبْۜ يَا مُوسٰٓى اَقْبِلْ وَلَا تَخَفْ اِنَّكَ مِنَ
الْاٰمِن۪ينَ ﴿٣١﴾ اُسْلُكْ يَدَكَ ف۪ي جَيْبِكَ تَخْرُجْ بَيْضَٓاءَ مِنْ غَيْرِ
سُٓوءٍۘ وَاضْمُمْ اِلَيْكَ جَنَاحَكَ مِنَ الرَّهْبِ فَذَانِكَ بُرْهَانَانِ
مِنْ رَبِّكَ اِلٰى فِرْعَوْنَ وَمَلَا۬ئِه۪ۜ اِنَّهُمْ كَانُوا قَوْمًا فَاسِق۪ينَ
﴿٣٢﴾ قَالَ رَبِّ اِنّ۪ي قَتَلْتُ مِنْهُمْ نَفْسًا فَاَخَافُ اَنْ يَقْتُلُونِ
﴿٣٣﴾ وَاَخ۪ي هٰرُونُ هُوَ اَفْصَحُ مِنّ۪ي لِسَانًا فَاَرْسِلْهُ مَعِيَ
رِدْءًا يُصَدِّقُن۪ٓي اِنّ۪ٓي اَخَافُ اَنْ يُكَذِّبُونِ ﴿٣٤﴾ قَالَ سَنَشُدُّ
عَضُدَكَ بِاَخ۪يكَ وَنَجْعَلُ لَكُمَا سُلْطَانًا فَلَا يَصِلُونَ
اِلَيْكُمَا بِاٰيَاتِنَاۚ اَنْتُمَا وَمَنِ اتَّبَعَكُمَا الْغَالِبُونَ ﴿٣٥﴾
فَلَمَّا

**29**- Vêca dema Mûsa qewlê xwe temam kir û bi hefsera xwe re derket rê, li aliyê (Çiyayê) Tûr agirek dît. Ji hefsera xwe re got: Hûn (li vir) rawestin, min agirek dît, dibe ku ji wê ez ji we re xeberekê yan jî pêtek agir bînim da ku hûn xwe pê germ bikin.

**30**- Dema hat cem êgir, ji aliyê rastê yê newalê, li wî cihê pîroz ji darê hate gazîkirin: Ey Mûsa! Bêguman ez Ellah Teala Xwedayê tevekî alemê me.

**31**- Gopalê xwe biavêje! (Mûsa jî gopalê xwe avêt). Vêca dema Mûsa dît ku gopalê wî wek mar bi lez xwe diavêje û diçe, (ji tirsa) revî û li pişt xwe nezivirî. (Me jê re got:) Ey Mûsa! Metirse, bêguman tu ji yên piştrast û emîn î.

**32**- Destê xwe têxe paxila xwe dê spî derkeve, spîtiyeke ne ji nexweşî. Çengê xwe yê ku ji tirsê (vebûye) bi ber xwe ve bikişîne (tirsa te dê biçe), ha ev ji Xwedayê te, ji bo Firewn û giregirên wî du delîl û mucîzeyên binbir in. Bêguman ew her miletekî jirêderketî ne.

**33**- Mûsa got: Xwedayê min! Min şexsek ji wan kuştibû, vêca ez ditirsim ku ew min bikujin.

**34**- Birayê min Harûn ji min bi zimantir e, vêca wek piştevan û arîkar digel min bişîne da ku ew min rast bidêre. Ez ditirsim ku ew bi min bawerî neyînin.

**35**- Xwedê Teala got: Em ê bi birayê te pişta te qayîm bikin û em ê bi ayet û mucîzeyên xwe serdestiyê bidin we, êdî ew nagihîjin we. Hûn û yên ku li pey we tên, teqez dê bi ser bikevin.

فَلَمَّا جَٓاءَهُمْ مُوسٰى بِاٰيَاتِنَا بَيِّنَاتٍ قَالُوا مَا هٰذَٓا اِلَّا
سِحْرٌ مُفْتَرًى وَمَا سَمِعْنَا بِهٰذَا فٖٓى اٰبَٓائِنَا الْاَوَّلٖينَ ٣٦
وَقَالَ مُوسٰى رَبّٖٓى اَعْلَمُ بِمَنْ جَٓاءَ بِالْهُدٰى مِنْ عِنْدِهٖ
وَمَنْ تَكُونُ لَهُ عَاقِبَةُ الدَّارِ اِنَّهُ لَا يُفْلِحُ الظَّالِمُونَ ٣٧
وَقَالَ فِرْعَوْنُ يَٓا اَيُّهَا الْمَلَاُ مَا عَلِمْتُ لَكُمْ مِنْ اِلٰهٍ
غَيْرٖى فَاَوْقِدْ لٖى يَا هَامَانُ عَلَى الطّٖينِ فَاجْعَلْ لٖى صَرْحًا
لَعَلّٖٓى اَطَّلِعُ اِلٰٓى اِلٰهِ مُوسٰى وَاِنّٖى لَاَظُنُّهُ مِنَ الْكَاذِبٖينَ
٣٨ وَاسْتَكْبَرَ هُوَ وَجُنُودُهُ فِى الْاَرْضِ بِغَيْرِ الْحَقِّ
وَظَنُّٓوا اَنَّهُمْ اِلَيْنَا لَا يُرْجَعُونَ ٣٩ فَاَخَذْنَاهُ وَجُنُودَهُ
فَنَبَذْنَاهُمْ فِى الْيَمِّ فَانْظُرْ كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ الظَّالِمٖينَ
٤٠ وَجَعَلْنَاهُمْ اَئِمَّةً يَدْعُونَ اِلَى النَّارِ وَيَوْمَ الْقِيٰمَةِ
لَا يُنْصَرُونَ ٤١ وَاَتْبَعْنَاهُمْ فٖى هٰذِهِ الدُّنْيَا لَعْنَةً وَيَوْمَ
الْقِيٰمَةِ هُمْ مِنَ الْمَقْبُوحٖينَ ٤٢ وَلَقَدْ اٰتَيْنَا مُوسَى
الْكِتَابَ مِنْ بَعْدِ مَٓا اَهْلَكْنَا الْقُرُونَ الْاُولٰى
بَصَٓائِرَ لِلنَّاسِ وَهُدًى وَرَحْمَةً لَعَلَّهُمْ يَتَذَكَّرُونَ ٤٣

**36**- Vêca dema Mûsa bi ayetên me yên aşkera ji wan re hat, gotin: Ev, ji sêreke çêkirî pê ve ne tiştekî din e. Me tiştekî wiha ji bav û bapîrên xwe yên pêşîn nebihîstiye.

**37**- Mûsa got: Xwedayê min bêhtir dizane ka kî ji cem wî hîdayet aniye û encama xêrê ka ji kê re ye. Bêguman zalim bi ser nakevin.

**38**- Firewn got: Gelî giregiran! Ez ji bo we, ji xwe pê ve xwedayekî din nas nakim. Ey Haman! De heydê ji bo min li ser heriyê agir pêxe (kerpîçan çêke), ji min re koşkekî lê bike ku ez Xwedayê Mûsa bibînim, lê belê ez guman dikim ku teqez ew ji derewkeran e.

**39**- Firewn û leşkerên xwe bi neheqî xwe li ser axa Misrê mezin dêrane û ji wan we ye ku ew ê li me venegerin.

**40**- Me jî ew û leşkerên wî girtin û di deryayê werkirin. (Ya Muhemmed!) De binêre encama zaliman ka çawa bûye!

**41**- Me ew li dinyayê kirin serokên (gawiriyê) ku (xelkê) gazî bal êgir ve dikin û roja qiyametê arîkariya wan dê neye kirin.

**42**- Me li vê cîhanê lanet (dûrketina ji rehma Xwedê) li pey wan xist. Roja qiyametê jî ew ji lanetiyan in.

**43**- Sond be, piştî ku me umetên pêşî (mîna gelê Nûh, Ad, Semûd û Firewn) ji holê rakirin, Me Tewrat da Mûsa ji bo ku ji mirovan re bibe ronahî, rasterêyî û rehmet, da ku ew jê şîretan wergirin.

وَمَا كُنْتَ بِجَانِبِ الْغَرْبِيِّ اِذْ قَضَيْنَٓا اِلٰى مُوسَى الْاَمْرَ
وَمَا كُنْتَ مِنَ الشَّاهِدٖينَۙ ﴿٤٤﴾ وَلٰكِنَّٓا اَنْشَاْنَا قُرُونًا
فَتَطَاوَلَ عَلَيْهِمُ الْعُمُرُۚ وَمَا كُنْتَ ثَاوِيًا فٖٓي اَهْلِ مَدْيَنَ
تَتْلُوا عَلَيْهِمْ اٰيَاتِنَاۙ وَلٰكِنَّا كُنَّا مُرْسِلٖينَ ﴿٤٥﴾ وَمَا
كُنْتَ بِجَانِبِ الطُّورِ اِذْ نَادَيْنَا وَلٰكِنْ رَحْمَةً مِنْ رَبِّكَ
لِتُنْذِرَ قَوْمًا مَٓا اَتٰيهُمْ مِنْ نَذٖيرٍ مِنْ قَبْلِكَ لَعَلَّهُمْ يَتَذَكَّرُونَ
﴿٤٦﴾ وَلَوْلَٓا اَنْ تُصٖيبَهُمْ مُصٖيبَةٌ بِمَا قَدَّمَتْ اَيْدٖيهِمْ فَيَقُولُوا
رَبَّنَا لَوْلَٓا اَرْسَلْتَ اِلَيْنَا رَسُولًا فَنَتَّبِعَ اٰيَاتِكَ وَنَكُونَ مِنَ
الْمُؤْمِنٖينَ ﴿٤٧﴾ فَلَمَّا جَٓاءَهُمُ الْحَقُّ مِنْ عِنْدِنَا قَالُوا لَوْلَٓا
اُوتِيَ مِثْلَ مَٓا اُوتِيَ مُوسٰىۜ اَوَلَمْ يَكْفُرُوا بِمَٓا اُوتِيَ مُوسٰى
مِنْ قَبْلُۚ قَالُوا سِحْرَانِ تَظَاهَرَاۙ وَقَالُٓوا اِنَّا بِكُلٍّ كَافِرُونَ
﴿٤٨﴾ قُلْ فَأْتُوا بِكِتَابٍ مِنْ عِنْدِ اللّٰهِ هُوَ اَهْدٰى مِنْهُمَٓا
اَتَّبِعْهُ اِنْ كُنْتُمْ صَادِقٖينَ ﴿٤٩﴾ فَاِنْ لَمْ يَسْتَجٖيبُوا لَكَ
فَاعْلَمْ اَنَّمَا يَتَّبِعُونَ اَهْوَٓاءَهُمْۜ وَمَنْ اَضَلُّ مِمَّنِ اتَّبَعَ هَوٰيهُ
بِغَيْرِ هُدًى مِنَ اللّٰهِۜ اِنَّ اللّٰهَ لَا يَهْدِي الْقَوْمَ الظَّالِمٖينَ ﴿٥٠﴾

وَلَقَدْ

**44**- Dema em digel Mûsa axivîn (me pêxemberî dayê û me ew şande cem Firewn û qewmê wî), tu (ey Muhemmed!) ne li aliyê rojavayê Çiyayê Tûr bûyî û tu li wir jî ne hazir bûyî.

**45**- Lê belê me (ji wê çaxê û heyanî çaxê te) gelek umet afirandin, vêca bi ser wan de demên dirêj derbas bûn (derfet ji bo wan dirêj bû, şerî'et û ehkam guhartin, ilm ji holê rabû, wehî hate birîn, êdî me tu bi pêxemberî hinart da ku kar û barê dînî nû bikî). Tu di nav xelkê Medyenê de niştecih jî nebûyî (hetanî ku tu serpêhatiyên wan bizanî) ku tu ji wan (xelkê Mekkê) re bixwînî. Lê belê me tu bi pêxemberî hinartî (û me serpêhatiyên wan ji te re dan zanîn).

**46**- Dema me bangî Mûsa kir jî tu ne li kêleka (Çiyayê) Tûr bûyî. Lê belê Xwedayê te ji dilovaniya xwe (wehî ji te re şand, tu kirî pêxember) da ku tu xelkekî ku beriya te tu pêxember ji bo wan nehatibûn, hişyar û agahdar bikî; da ku ew tê bigihîjin û li xwe bizivirin.

**47**- Eger ne ji ber vê gotina wan bûya ya ku dema belayek hate serê wan bi sedema ya ku kirin, vêca wan bigota: Xwedayê me! De bila te pêxemberek ji me re şandibûya, vêca me jî bidaya pey ayetên te û em bibûna ji bawermendan; (me tu bi pêxemberî ji wan re nedihinart).

**48**- Vêca dema ji cem me heq (hinartina Pêxember bi Quranê) ji wan re hat, gotin: De bila ya ji bo Mûsa hatî ji Muhemmedî re jî bihata? Baş e, qey wan a ku hê berê ji Mûsa re hatibû dayîn jî mandel nekiribû? Qey wan negotibû: Ev her du (Muhemmed û Mûsa) du sêrbaz in piştevaniya hev dikin û gotin; bêguman me bi herduyan jî bawerî nîn e.

**49**- Bibêje: Eger Bi rastî hûn rastgo ne, naxwe hûn jî kitêbekê ji (cem) Xwedê Teala bînin ku ew ji her duyan (Quran û Tewratê) rasttir be, vêca da ku ez bidim pey wê!

**50**- Eger ew bersiva te nedin, bizane ku ew tenê li pey hewesên xwe diçin. Qey ji wî kesî kî rêşaştir e ku bêyî rêzanekî ji Xwedê Teala jê re hebe, li pey hewesa xwe biçe? Bêguman Xwedê Teala civata zalim rasterê nake.

وَلَقَدْ وَصَّلْنَا لَهُمُ الْقَوْلَ لَعَلَّهُمْ يَتَذَكَّرُونَ ﴿٥١﴾ اَلَّذِينَ اٰتَيْنَاهُمُ
الْكِتَابَ مِنْ قَبْلِهِ هُمْ بِهِ يُؤْمِنُونَ ﴿٥٢﴾ وَاِذَا يُتْلٰى عَلَيْهِمْ قَالُوا
اٰمَنَّا بِهِ اِنَّهُ الْحَقُّ مِنْ رَبِّنَا اِنَّا كُنَّا مِنْ قَبْلِهِ مُسْلِمِينَ ﴿٥٣﴾
اُولٰئِكَ يُؤْتَوْنَ اَجْرَهُمْ مَرَّتَيْنِ بِمَا صَبَرُوا وَيَدْرَؤُنَ بِالْحَسَنَةِ
السَّيِّئَةَ وَمِمَّا رَزَقْنَاهُمْ يُنْفِقُونَ ﴿٥٤﴾ وَاِذَا سَمِعُوا اللَّغْوَ اَعْرَضُوا
عَنْهُ وَقَالُوا لَنَا اَعْمَالُنَا وَلَكُمْ اَعْمَالُكُمْ سَلَامٌ عَلَيْكُمْ
لَا نَبْتَغِى الْجَاهِلِينَ ﴿٥٥﴾ اِنَّكَ لَا تَهْدِى مَنْ اَحْبَبْتَ وَلٰكِنَّ
اللّٰهَ يَهْدِى مَنْ يَشَاءُ وَهُوَ اَعْلَمُ بِالْمُهْتَدِينَ ﴿٥٦﴾ وَقَالُوا اِنْ
نَتَّبِعِ الْهُدٰى مَعَكَ نُتَخَطَّفْ مِنْ اَرْضِنَا اَوَلَمْ نُمَكِّنْ
لَهُمْ حَرَمًا اٰمِنًا يُجْبٰى اِلَيْهِ ثَمَرَاتُ كُلِّ شَىْءٍ رِزْقًا مِنْ لَدُنَّا
وَلٰكِنَّ اَكْثَرَهُمْ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٥٧﴾ وَكَمْ اَهْلَكْنَا مِنْ قَرْيَةٍ
بَطِرَتْ مَعِيشَتَهَا فَتِلْكَ مَسَاكِنُهُمْ لَمْ تُسْكَنْ مِنْ بَعْدِهِمْ
اِلَّا قَلِيلًا وَكُنَّا نَحْنُ الْوَارِثِينَ ﴿٥٨﴾ وَمَا كَانَ رَبُّكَ
مُهْلِكَ الْقُرٰى حَتّٰى يَبْعَثَ فِى اُمِّهَا رَسُولًا يَتْلُوا عَلَيْهِمْ
اٰيَاتِنَا وَمَا كُنَّا مُهْلِكِى الْقُرٰى اِلَّا وَاَهْلُهَا ظَالِمُونَ ﴿٥٩﴾

حزب ٣

**51**- Sond be, me ayetên Quranê li dûv hev, yek li pey yekê ji bo wan hinart da ku ew jê şîretan wergirin û li xwe bizivirin.

**52**- Ew ên ku berî Quranê me kitêb dane wan (ku ew fileh û cihûyên ku xwe neguhartibûn) bawerî bi vê Quranê jî tînin.

**53**- Dema Quran ji wan re tê xwendin, dibêjin; me bawerî pê anî. Bêguman ew heq e, ji cem Xwedayê me hatiye. Bêguman berî wê jî em misliman bûn (em bibawer bûn ku pêxemberek dê bê).

**54**- Ha ji ber sebra wan du caran xêr ji wan re tê dayîn. Ew neqenciyê bi qenciyê didin alî û rizqê ku me daye wan jî ji bo rizaya Xwedê Teala xerc dikin.

**55**- Dema ew gotina pûç/kelevajî dibihîzin, berê xwe jê vedigerînin û dibêjin: Karên me ji me re û karên we ji we re. Ji me emîn bin û em ji xêrê pê ve li we nazivirînin, em naxwazin têkilî nezanan bibin.

**56**- (Ya Muhemmed!) Tu nikarî yê ku tu jê hez dikî bînî hîdayetê, lê belê Xwedê kê bivê wî tîne hîdayetê û ew çêtir dizane; ka kî layîqê hîdayetê ye.

**57**- (Muşrikên Mekkê) Gotin: Eger em bi te re bidin pey riya rast, em ê ji welatê xwe bêne derxistin. (Xwedê dibêje:) Qey me ew li cihekî ku (zilm) lê heram û li cihekî ewle cîwar nekirin ku ji kerema me ji her cihî fêkiyên her tiştî bi bal ve tên? Lê belê pirên wan nezan in.

**58**- Me gelek welat wêran kirin bi sedema ku bitrî kirin û ji ser xwe ve çûn. Vêca ha ev warên wan in, kavil in! Piştî wan ava nebûne -ku bi rêbiwarî nebe- kes di wan de niştecih nebûye û em bûne mîratgirên wan.

**59**- Xwedayê te tu welatî (bi sedema kufr û zilma wan) wêran nake heta ku pêxemberekî ji wan re neşîne ku ayetên me ji wan re bixwîne (û wan hişyar bike û riya rast ji bo wan diyar bike). Jixwe me tu welat ji navê nebirine eger ku xelkê wî bi xwe zalim nebin.

وَمَٓا اُو۫تٖيتُمْ مِنْ شَيْءٍ فَمَتَاعُ الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا وَزٖينَتُهَا وَمَا عِنْدَ
اللّٰهِ خَيْرٌ وَاَبْقٰى اَفَلَا تَعْقِلُونَ ﴿٦٠﴾ اَفَمَنْ وَعَدْنَاهُ وَعْدًا حَسَنًا فَهُوَ
لَاقٖيهِ كَمَنْ مَتَّعْنَاهُ مَتَاعَ الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا ثُمَّ هُوَ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ
مِنَ الْمُحْضَرٖينَ ﴿٦١﴾ وَيَوْمَ يُنَادٖيهِمْ فَيَقُولُ اَيْنَ شُرَكَٓائِيَ
الَّذٖينَ كُنْتُمْ تَزْعُمُونَ ﴿٦٢﴾ قَالَ الَّذٖينَ حَقَّ عَلَيْهِمُ الْقَوْلُ رَبَّنَا
هٰٓؤُلَٓاءِ الَّذٖينَ اَغْوَيْنَا اَغْوَيْنَاهُمْ كَمَا غَوَيْنَا تَبَرَّاْنَٓا اِلَيْكَ
مَا كَانُٓوا اِيَّانَا يَعْبُدُونَ ﴿٦٣﴾ وَقٖيلَ ادْعُوا شُرَكَٓاءَكُمْ
فَدَعَوْهُمْ فَلَمْ يَسْتَجٖيبُوا لَهُمْ وَرَاَوُا الْعَذَابَ لَوْ اَنَّهُمْ كَانُوا
يَهْتَدُونَ ﴿٦٤﴾ وَيَوْمَ يُنَادٖيهِمْ فَيَقُولُ مَاذَٓا اَجَبْتُمُ الْمُرْسَلٖينَ ﴿٦٥﴾
فَعَمِيَتْ عَلَيْهِمُ الْاَنْبَٓاءُ يَوْمَئِذٍ فَهُمْ لَا يَتَسَٓاءَلُونَ ﴿٦٦﴾ فَاَمَّا مَنْ
تَابَ وَاٰمَنَ وَعَمِلَ صَالِحًا فَعَسٰٓى اَنْ يَكُونَ مِنَ الْمُفْلِحٖينَ
﴿٦٧﴾ وَرَبُّكَ يَخْلُقُ مَا يَشَٓاءُ وَيَخْتَارُ مَا كَانَ لَهُمُ الْخِيَرَةُ
سُبْحَانَ اللّٰهِ وَتَعَالٰى عَمَّا يُشْرِكُونَ ﴿٦٨﴾ وَرَبُّكَ يَعْلَمُ مَا
تُكِنُّ صُدُورُهُمْ وَمَا يُعْلِنُونَ ﴿٦٩﴾ وَهُوَ اللّٰهُ لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَ لَهُ
الْحَمْدُ فِي الْاُو۫لٰى وَالْاٰخِرَةِ وَلَهُ الْحُكْمُ وَاِلَيْهِ تُرْجَعُونَ ﴿٧٠﴾

قُلْ

**60**- Her tiştekî Xwedê daye we vêca ew xeml û pêxweşiya jiyana dinyayê ye û ya ku li cem Xwedê ye, ew jê çêtir û daîmîtir e. Erê ma hê jî hûn aqil nagirin?

**61**- Ma ew ê ku me ji cem xwe peymana bi bihiştê jê re daye ku her dê bigihîjê, weke wî kesî ye ku me pêxweşiya jiyana dinyayê dayê, paşî roja qiyametê ew bibe ji yên ku di dojehê de tên berhevkirin?

**62**- Wê roja ku Xwedê gazî wan dike û dibêje: Ka ew hevpişkên ku bi derew we ji bo min çêdikirin li ku ne (de bila arîkariya we bikin)?

**63**- (Wê rojê) Ew ên ku ezab ji wan re pêdivî bûye, dibêjin: Xwedayê me! Ha ev ê han in, ew ên ku me ew ji rê xistine, çawa em ji rê ketibûn her wiha me ew jî ji rê xistin. Em li cenabê te aşkera dikin ku em ji (sûcên) wan bêrî û dûr in. Jixwe wan perestina me nedikir (belkî wan perestina dilxwaziyên xwe dikir).

**64**- (Wê rojê) Ji wan re tê gotin: De heydê gazî wan hevpişkên xwe bikin (ew ên ku we digot ew şerîkên Xwedê ne)! Ew jî gazî wan dikin, lê belê ew (pût) neşên bersiva wan bidin. Dema ew (li pêşberî xwe) ezab û dojehê dibînin (hingî ji dil poşman dibin û dibêjin:) xwezî em li dinyayê li ser riya rast bûna.

**65**- Wê rojê Xwedê Teala gazî wan dike, dibêje: We çi bersiv da pêxemberan?

**66**- Ha wê rojê temamê delîlan ji ber wan tên veşartin, ew ê nikaribin ji hev jî bipirsin.

**67**- Vêca çi kesê tobe bike, bawerî bîne û karê qenc bike, hêvî heye ku ew bibe ji yên ku serfiraz bûne.

**68**- Xwedayê te, yê ku bivê diafirîne û wî ji dostaniya xwe re dibijêre. Ji wan re mafê bijartinê tune ye. Xwedê ji her kêmasiyê pak û munezeh e û ji ya ku jê re dikin hevpişk bilind û dûr e.

**69**- Xwedayê te bi ya ku ew di sînga xwe de vedişêrin û bi ya ku aşkera jî dikin, dizane.

**70**- Ha ew Ellah Teala ye, ji wî pê ve tu xweda tun in. Hemd û spasî li dinya û axretê her ji bo wî ye. Hukm û ferman her ên wî ne û hûn ê her bi bal wî ve bên vegerandin.

قُلْ اَرَاَيْتُمْ اِنْ جَعَلَ اللّٰهُ عَلَيْكُمُ الَّيْلَ سَرْمَدًا اِلٰى يَوْمِ
الْقِيٰمَةِ مَنْ اِلٰهٌ غَيْرُ اللّٰهِ يَأْت۪يكُمْ بِضِيَٓاءٍ اَفَلَا تَسْمَعُونَ ﴿٧١﴾
قُلْ اَرَاَيْتُمْ اِنْ جَعَلَ اللّٰهُ عَلَيْكُمُ النَّهَارَ سَرْمَدًا اِلٰى يَوْمِ
الْقِيٰمَةِ مَنْ اِلٰهٌ غَيْرُ اللّٰهِ يَأْت۪يكُمْ بِلَيْلٍ تَسْكُنُونَ ف۪يهِ اَفَلَا
تُبْصِرُونَ ﴿٧٢﴾ وَمِنْ رَحْمَتِه۪ جَعَلَ لَكُمُ الَّيْلَ وَالنَّهَارَ
لِتَسْكُنُوا ف۪يهِ وَلِتَبْتَغُوا مِنْ فَضْلِه۪ وَلَعَلَّكُمْ تَشْكُرُونَ ﴿٧٣﴾
وَيَوْمَ يُنَاد۪يهِمْ فَيَقُولُ اَيْنَ شُرَكَٓائِيَ الَّذ۪ينَ كُنْتُمْ
تَزْعُمُونَ ﴿٧٤﴾ وَنَزَعْنَا مِنْ كُلِّ اُمَّةٍ شَه۪يدًا فَقُلْنَا هَاتُوا
بُرْهَانَكُمْ فَعَلِمُٓوا اَنَّ الْحَقَّ لِلّٰهِ وَضَلَّ عَنْهُمْ مَا كَانُوا
يَفْتَرُونَ ﴿٧٥﴾ اِنَّ قَارُونَ كَانَ مِنْ قَوْمِ مُوسٰى فَبَغٰى
عَلَيْهِمْ وَاٰتَيْنَاهُ مِنَ الْكُنُوزِ مَٓا اِنَّ مَفَاتِحَهُ لَتَنُٓوأُ بِالْعُصْبَةِ
اُو۬لِي الْقُوَّةِ اِذْ قَالَ لَهُ قَوْمُهُ لَا تَفْرَحْ اِنَّ اللّٰهَ لَا يُحِبُّ
الْفَرِح۪ينَ ﴿٧٦﴾ وَابْتَغِ ف۪يمَٓا اٰتٰيكَ اللّٰهُ الدَّارَ الْاٰخِرَةَ وَلَا
تَنْسَ نَص۪يبَكَ مِنَ الدُّنْيَا وَاَحْسِنْ كَمَٓا اَحْسَنَ اللّٰهُ اِلَيْكَ
وَلَا تَبْغِ الْفَسَادَ فِي الْاَرْضِ اِنَّ اللّٰهَ لَا يُحِبُّ الْمُفْسِد۪ينَ ﴿٧٧﴾

**71**- Bibêje: De ji min re bibêjin, eger Xwedê heta roja qiyametê şevê li ser we bihêle, ji bilî Xwedê kî îlah heye ku ji we re rojê bîne? Erê ma hê jî hûn guhê xwe venakin û tênagihîjin?

**72**- Bibêje: De ka ji min re bibêjin, eger Xwedê heta roja qiyametê li ser we rojê bihêle. Ji bilî Xwedê Teala kîjan îlah (ên ku hûn bi wan diperizin) heye ku ji we re wê şevê bîne ku hûn tê de bêhna xwe berdin? Erê ma hê jî hûn (şaşiya muşrikiya xwe) nabînin?

**73**- Xwedê, ji dilovaniya xwe ji bo we şev û roj afirandine da ku hûn bi şevê bêhna xwe berdin û (bi rojê jî) ji kerema wî li rizqê xwe bigerin û da ku hûn (di şev û rojê de) spasiya (nimetên) wî bikin.

**74**- Wê roja ku Xwedê Teala gazî wan dike û dibêje: Ka ew hevpişkên ku bi derew we ji bo min çêdikirin, li ku ne (de ka bila arîkariya we bikin)?

**75**- (Wê rojê) Em ji her umetekê şahidekî derdixin (da ku şahdeyiyê li ser kiryarên wan bide ku ew jî pêxemberê wan bi xwe ye) û dibêje: Ka delîl û nîşanên xwe bînin (ku ji Xwedê re hevpişk hene)?! Vêca yeqîn zanîn ku Heq (Xwedatî) her ji bo Ellah Teala ye û ew hevpişkên ku lêdianîn û texmîn dikirin (ku dê berevaniya wan bikin) ji ber wan winda bûn.

**76**- Bêguman Qarûn ji gelê Mûsa bû. Vêca xwe li ser miletê xwe mezin kir û li wan zilim kir. Me hin gencîneyên wisa dabûn wî ku (hilgirtina) kilîlên wan ji desteyeke xurt re jî zor û giran dihat. Gelê wî jê re got: Çavsoriyê meke û bitir mebe! Bêguman Xwedê ji çavsor û bitran hez nake.

**77**- Bi wî malê ku Xwedê daye te mala axîretê bixwaze. Lê belê para xwe ji cîhanê jî ji bîr neke. Xwedê wekî ku qencî li te kiriye tu jî wisa qenciyê (li xelkê) bike û li erdê xerabiyê nexwaze. Bêguman Xwedê ji mufsidan hez nake.

قَالَ اِنَّمَا اُوتِيتُهُ عَلٰى عِلْمٍ عِنْدٖى اَوَلَمْ يَعْلَمْ اَنَّ اللّٰهَ قَدْ اَهْلَكَ
مِنْ قَبْلِهٖ مِنَ الْقُرُونِ مَنْ هُوَ اَشَدُّ مِنْهُ قُوَّةً وَاَكْثَرُ جَمْعًا
وَلَا يُسْـَٔلُ عَنْ ذُنُوبِهِمُ الْمُجْرِمُونَ ﴿٧٨﴾ فَخَرَجَ عَلٰى قَوْمِهٖ فٖى
زٖينَتِهٖ قَالَ الَّذٖينَ يُرٖيدُونَ الْحَيٰوةَ الدُّنْيَا يَا لَيْتَ لَنَا مِثْلَ
مَٓا اُوتِىَ قَارُونُ اِنَّهُ لَذُو حَظٍّ عَظٖيمٍ ﴿٧٩﴾ وَقَالَ الَّذٖينَ اُوتُوا
الْعِلْمَ وَيْلَكُمْ ثَوَابُ اللّٰهِ خَيْرٌ لِمَنْ اٰمَنَ وَعَمِلَ صَالِحًا وَلَا
يُلَقّٰيهَٓا اِلَّا الصَّابِرُونَ ﴿٨٠﴾ فَخَسَفْنَا بِهٖ وَبِدَارِهِ الْاَرْضَ فَمَا
كَانَ لَهُ مِنْ فِئَةٍ يَنْصُرُونَهُ مِنْ دُونِ اللّٰهِ وَمَا كَانَ مِنَ
الْمُنْتَصِرٖينَ ﴿٨١﴾ وَاَصْبَحَ الَّذٖينَ تَمَنَّوْا مَكَانَهُ بِالْاَمْسِ
يَقُولُونَ وَيْكَاَنَّ اللّٰهَ يَبْسُطُ الرِّزْقَ لِمَنْ يَشَٓاءُ مِنْ عِبَادِهٖ
وَيَقْدِرُ لَوْلَٓا اَنْ مَنَّ اللّٰهُ عَلَيْنَا لَخَسَفَ بِنَا وَيْكَاَنَّهُ
لَا يُفْلِحُ الْكَافِرُونَ ﴿٨٢﴾ تِلْكَ الدَّارُ الْاٰخِرَةُ نَجْعَلُهَا لِلَّذٖينَ
لَا يُرٖيدُونَ عُلُوًّا فِى الْاَرْضِ وَلَا فَسَادًا وَالْعَاقِبَةُ لِلْمُتَّقٖينَ ﴿٨٣﴾
مَنْ جَٓاءَ بِالْحَسَنَةِ فَلَهُ خَيْرٌ مِنْهَا وَمَنْ جَٓاءَ بِالسَّيِّئَةِ فَلَا
يُجْزَى الَّذٖينَ عَمِلُوا السَّيِّـَٔاتِ اِلَّا مَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿٨٤﴾

اِنَّ الَّذٖى

**78**- Qarûn got: Ew (serwet û mal) tenê bi zanîna min ji min re hatiye dayîn. Qey Qarûn nizanîbû ku Xwedê ji wan umetên beriya wî, gelek miletên jê bihêztir û têrmaltir jî ji navê biribûn? Gunehkar (roja qiyametê) ji gunehên xwe nayên pirsyarkirin (lewra Xwedê bi gunehên wan dizane û yê wan biavêje dojehê).

**79**- Qarûn bi îhtîşam û xemla xwe derket pêşberî gelê xwe. Ew ên ku jiyana cîhanê dixwestin, gotin: Xwezî wekî ya ji Qarûn re hatiye dayîn ji me re jî hebûya. Bêguman ew xwedan hebûneke mezin e!

**80**- Ew ên ku zanîn ji wan re hatibû dayîn, ji wan re wiha gotin: Xwelî li we be! Qenciya Xwedê ya ji bo wî kesê ku bawerî bîne û karê qenc bike çêtir e. Ew jî tenê ji sebirkêşan re tê dayîn.

**81**- Vêca me Qarûn bi mal û xanî ve di erdê de bire xwarê. Êdî jê re tu desteyek nebû ku li hemberî Xwedê arîkariya wî bike û wî bi xwe jî nekarî arîkariya xwe bike.

**82**- Ew ên ku hê duh dixwestin (ew) li şûna Qarûn bûna, digotin: Hey wax! Rast e, Xwedê ji evdên xwe kê bivê rizqê wî fireh dike (û kê bivê rizqê wî) teng dike. Eger Xwedê kerem li me nekira dê em jî bixistina binê erdê. Hey wax! Rast e, kafir bi ser nakevin.

**83**- Ha ew mala axîretê! Em wê didin ên ku li erdê bitrî û fesadiyê naxwazin. Encama (herî rind) ji bo teqwadaran e.

**84**- Kî (roja qiyametê) bi qenciyekê were, jê re xelateke ji wê çêtir heye. Kî jî bi neqenciyekê were, vêca ew ên ku neqenciyan bikin, tenê bi qasî ya ku kirine ceza dixwin.

Ellah Teala tu carî zulmê li bendeyên xwe nake, wekî ku ev ayeta pîroz jî dibêje, kî, qenciyekê bike deh caran bi qasî wê qenciyê û hê behtir jî ji wî re sewab û mukafat heye; lêbelê kî neqenciyekê bike tenê bi qasî wê ceza dixwe. Lêbelê ev yek di heqê qencî û neqencîyên ferdî de ne. Rewşa kesê ku serê pêşîn qencî, yan neqenciyekê derîne holê, pê emel bike û ji xelk û alemê re bibe rêber û numûne, ev cuda ye. Li gorî hedîsa sehîh ya ku Îmam Muslim di sehîha xwe de ragihandiye, ev rewş wiha rave kiriye: "Kî, di îslamê de adetekî qenc derîne holê, pê emel bike xêra wê ji wî re ye, hem jî bi qasî xêra kesê ku piştî wî jî pê emel bike jê re heye û tiştek ji xêra wan jî kêm nabe. Kî, di îslamê de adetekî neqenc derîne holê, pê emel bike gunehê wê ji wî re ye, hem jî bi qasî gunehê kesê ku piştî wî pê emel bike jî jê re guneh heye û tiştek ji gunehên wan jî kêm nabe".

إِنَّ الَّذِى فَرَضَ عَلَيْكَ الْقُرْاٰنَ لَرَٓادُّكَ اِلٰى مَعَادٍ قُلْ رَبّٓى اَعْلَمُ مَنْ
جَٓاءَ بِالْهُدٰى وَمَنْ هُوَ فى ضَلَالٍ مُبِينٍ ﴿٨٥﴾ وَمَا كُنْتَ تَرْجُٓوا اَنْ يُلْقٰٓى
اِلَيْكَ الْكِتَابُ اِلَّا رَحْمَةً مِنْ رَبِّكَ فَلَا تَكُونَنَّ ظَهِيرًا لِلْكَافِرِينَ ﴿٨٦﴾
وَلَا يَصُدُّنَّكَ عَنْ اٰيَاتِ اللّٰهِ بَعْدَ اِذْ اُنْزِلَتْ اِلَيْكَ وَادْعُ اِلٰى رَبِّكَ
وَلَا تَكُونَنَّ مِنَ الْمُشْرِكِينَ ﴿٨٧﴾ وَلَا تَدْعُ مَعَ اللّٰهِ اِلٰهًا اٰخَرَ لَٓا اِلٰهَ
اِلَّا هُوَ كُلُّ شَيْءٍ هَالِكٌ اِلَّا وَجْهَهُ لَهُ الْحُكْمُ وَاِلَيْهِ تُرْجَعُونَ ﴿٨٨﴾

سُورَةُ الْعَنْكَبُوتِ مَكِّيَّةٌ
وَهِيَ تِسْعٌ وَسِتُّونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

الٓمٓ ﴿١﴾ اَحَسِبَ النَّاسُ اَنْ يُتْرَكُٓوا اَنْ يَقُولُٓوا اٰمَنَّا وَهُمْ
لَا يُفْتَنُونَ ﴿٢﴾ وَلَقَدْ فَتَنَّا الَّذِينَ مِنْ قَبْلِهِمْ فَلَيَعْلَمَنَّ اللّٰهُ الَّذِينَ
صَدَقُوا وَلَيَعْلَمَنَّ الْكَاذِبِينَ ﴿٣﴾ اَمْ حَسِبَ الَّذِينَ يَعْمَلُونَ
السَّيِّـَٔاتِ اَنْ يَسْبِقُونَا سَٓاءَ مَا يَحْكُمُونَ ﴿٤﴾ مَنْ كَانَ
يَرْجُوا لِقَٓاءَ اللّٰهِ فَاِنَّ اَجَلَ اللّٰهِ لَاٰتٍ وَهُوَ السَّمِيعُ الْعَلِيمُ ﴿٥﴾
وَمَنْ جَاهَدَ فَاِنَّمَا يُجَاهِدُ لِنَفْسِهِ اِنَّ اللّٰهَ لَغَنِيٌّ عَنِ الْعَالَمِينَ ﴿٦﴾

**85**- (Ya Muhemmed!) Bêguman ew Xwedayê ku Quran li ser te ferz kiriye (ku tu bixwînî, ragihînî û pê emel bikî), misoger dê te (dîsa) vegerîne wî cihê ku tu (dixwazî) lê vegerî. Bibêje: Xwedayê min bêhtir dizane ka kî li ser hîdayetê ye û kî jî di nav rêşaşiyeke aşkera de ye.

**86**- Te hêvî nedikir ku ev Quran ji te re were wehîkirin. Lê belê ev ji Xwedayê te her rehmetek e. Naxwe zinhar, ji kafiran re nebe arîkar!

**87**- Piştî ayetên Xwedê ji te re hatin hinartin, êdî zinhar bila ew muşrik te ji wan ayetan venegerînin. Tu (xelkê) vexwîne bal (dînê) Xwedayê xwe ve û zinhar tu nebe ji muşrikan!

**88**- Digel Ellah Teala bi tu îlahan neperize (û jê re neke hevpişk). Ji bilî Ellah Teala tu xweda tun in. Ji Ellah Teala pê ve her tişt fanî ye û namîne. Hukm û ferman her jê re ye û hûn ê her bi bal ve vegerin.

## SÛREYÊ ENKEBÛT

Sûreyê Enkebût, 69 (şêst û neh) ayet e. Li Mekkê daketiye. Enkebût bi mehneya pîrevokê ye. Ji ber ku di ayeta 41'em de teşbîha karê kafiran bi tevna pîrê hatiye kirin ji vî sûreyê re Enkebût hatiye gotin.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

**1- Elîf. Lam. Mîm.**

**2**- Erê ma ji mirovan we ye ku ew bibêjin: “Me bawerî anî” dê dev ji wan bê berdan û ew ê neyên ceribandin?

**3**- Sond be, me ew ên beriya wan jî ceribandine. Naxwe Xwedê muheqeq dê rastbêjan derîne rastê, teqez dê derewkeran jî derîne holê.

**4**- Yan jî ma ew ên ku gunehan dikin guman dikin ku em nikarin wan bidin ezabê? Ev hukmê ku pê hukim dikin çiqas pîs e.

**5**- Ew kesê çûyîna huzûra Xwedê hêvî bike, vêca birastî ew civanê ku Xwedê diyar kiriye muheqeq dê were. Xwedê bihîzer e, zana ye.

**6**- Ew kesê ku di riya Xwedê de cîhadê bike, vêca ew tenê ji bo xwe cîhadê dike. Bêguman pêdiviya Xwedê bi kiryarên alemê nîn e.

وَالَّذٖينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ لَنُكَفِّرَنَّ عَنْهُمْ سَيِّـَٔاتِهِمْ
وَلَنَجْزِيَنَّهُمْ اَحْسَنَ الَّذٖى كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿٧﴾ وَوَصَّيْنَا الْاِنْسَانَ
بِوَالِدَيْهِ حُسْنًاۜ وَاِنْ جَاهَدَاكَ لِتُشْرِكَ بٖى مَا لَيْسَ لَكَ بِهٖ عِلْمٌ
فَلَا تُطِعْهُمَاۜ اِلَیَّ مَرْجِعُكُمْ فَاُنَبِّئُكُمْ بِمَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿٨﴾
وَالَّذٖينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ لَنُدْخِلَنَّهُمْ فِى الصَّالِحٖينَ
﴿٩﴾ وَمِنَ النَّاسِ مَنْ يَقُولُ اٰمَنَّا بِاللّٰهِ فَاِذَٓا اُوذِىَ فِى اللّٰهِ
جَعَلَ فِتْنَةَ النَّاسِ كَعَذَابِ اللّٰهِۜ وَلَئِنْ جَٓاءَ نَصْرٌ مِنْ رَبِّكَ
لَيَقُولُنَّ اِنَّا كُنَّا مَعَكُمْۜ اَوَلَيْسَ اللّٰهُ بِاَعْلَمَ بِمَا فٖى
صُدُورِ الْعَالَمٖينَ ﴿١٠﴾ وَلَيَعْلَمَنَّ اللّٰهُ الَّذٖينَ اٰمَنُوا وَلَيَعْلَمَنَّ
الْمُنَافِقٖينَ ﴿١١﴾ وَقَالَ الَّذٖينَ كَفَرُوا لِلَّذٖينَ اٰمَنُوا اتَّبِعُوا
سَبٖيلَنَا وَلْنَحْمِلْ خَطَايَاكُمْۜ وَمَا هُمْ بِحَامِلٖينَ مِنْ خَطَايَاهُمْ
مِنْ شَیْءٍۜ اِنَّهُمْ لَكَاذِبُونَ ﴿١٢﴾ وَلَيَحْمِلُنَّ اَثْقَالَهُمْ وَاَثْقَالًا
مَعَ اَثْقَالِهِمْۘ وَلَيُسْـَٔلُنَّ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ عَمَّا كَانُوا يَفْتَرُونَ
﴿١٣﴾ وَلَقَدْ اَرْسَلْنَا نُوحًا اِلٰى قَوْمِهٖ فَلَبِثَ فٖيهِمْ اَلْفَ سَنَةٍ
اِلَّا خَمْسٖينَ عَامًاۜ فَاَخَذَهُمُ الطُّوفَانُ وَهُمْ ظَالِمُونَ ﴿١٤﴾

فَاَنْجَيْنَاهُ

7- Ew ên ku bawerî anîn û karên qenc kirine, bêguman em ê gunehên wan ji ser wan bibin û em ê ji ya ku wan kirin spehîtir xelatê bidin wan.

8- Me wesiyet li însanan kir ku li dê û bavên xwe qenciyê bikin. Eger ew bi te re têbikoşin da ku ew tiştê ku zanebûna te pê tune ye, tu ji min re bikî heval û hevpişk, vêca wê hingê bi gotina wan meke. Vegera we her bi bal min ve ye, vêca ez ê bi ya ku we dikir, we agahdar bikim.

Ji Se'd kurê Ebû Weqqas hatiye rîwayetkirin: Ez şexsekî wisa bûm ku min pir qencî li diya xwe dikir. Vêca gava ez misliman bûm. Gote min: Hey Sa'd! Ev çi dîn e ku te xwe pê girtiye? Yan tu dê dev ji vî dînî berdî, yan jî ez ê xwarinê nexwim, avê venexwim heta ku ez bimrim û tu jî ji ber min şermezar bibî. Vêca ji te re were gotin: Hey qatilê diya xwe! Min jê re got: Dayika minê, vê meke. Lewra ez nikarim ji bo çu tiştî dev ji dînê xwe berdim. Sa'd dibêje: Diya min rojek û şevekê wisa ma û nexwar. Lê bû sibeh û ji hal ket. Piştre roj û şeveke din jî wisa ma û nexwar. Çi gava min ev rewş dît. Min jê re got: Dayika min! Ez bi Xwedê sond dixwim tu jî baş dizanî ku sed ruhên te hebin û yek bi yek ruhên te derkevin jî ezê ji bo te dev ji dînê xwe bernedim! Vêca heke tu bivî bixwe û heke tu bivê nexwe. Çi gava wê ev rewş dît, xwar. Vêca Xwedê ev ayet di bara vê yekê de nazil kir. Bi vî awayî hukmê xwe diyar kir ku divê misliman li ku derê bi ya dê-bavên xwe bikin û li ku derê nekin.

9- Ew ên ku bawerî anîn û karên qenc kirine, teqez em ê wan bixin nav qencîkaran.

10- Ji mirovan hin hene ku dibêjin: "Me, bawerî bi Xwedê aniye", lê belê gava ku ji bo Xwedê bêne êşandin, îşkenceya mirovan wekî ezabê Xwedê digirin. Eger ku serkeftinek ji Xwedayê te were, teqez dê bibêjin: "Em bi we re bûn." Erê ma Xwedê bi ya di sînga alemê de ne zanatir e?

11- Sond be, Xwedê Teala teqez dê bizanibe ka kê ji dil û can bawerî aniye û teqez dê bizanibe ka kî jî munafiq bûye.

12- Ew ên ku kafir bûne ji bawermendan re dibêjin: Bidin pey riya me, em ê gunehên we jî hilgirin. Hal ev e ku ji gunehên wan ew nikarin tiştekî hilgirin. Bêguman ew (di gotina xwe de) derewker in.

13- Sond be ew (kafir) teqez dê gunehên xwe û digel gunehên xwe gunehên wan ên ku ew ji rê birine jî hilgirin! Bêguman ew ê roja qiyametê ji ya ku lêdianîn jî, bêne pirsiyarkirin!

14- Sond be me Nûh jî (bi pêxemberî) ji gelê wî re şand. Vêca ew pêncî sal kêm ji hezar salî, li nav wan ma. Îcar tofanê ew hingaftin (û ew xeniqandin) û ew li xwe zilimkar bûn.

فَاَنْجَيْنَاهُ وَاَصْحَابَ السَّف۪ينَةِ وَجَعَلْنَاهَٓا اٰيَةً لِلْعَالَم۪ينَ ﴿١٥﴾
وَاِبْرٰه۪يمَ اِذْ قَالَ لِقَوْمِهِ اعْبُدُوا اللّٰهَ وَاتَّقُوهُۜ ذٰلِكُمْ خَيْرٌ
لَكُمْ اِنْ كُنْتُمْ تَعْلَمُونَ ﴿١٦﴾ اِنَّمَا تَعْبُدُونَ مِنْ دُونِ
اللّٰهِ اَوْثَانًا وَتَخْلُقُونَ اِفْكًاۜ اِنَّ الَّذ۪ينَ تَعْبُدُونَ مِنْ دُونِ
اللّٰهِ لَا يَمْلِكُونَ لَكُمْ رِزْقًا فَابْتَغُوا عِنْدَ اللّٰهِ الرِّزْقَ
وَاعْبُدُوهُ وَاشْكُرُوا لَهُۜ اِلَيْهِ تُرْجَعُونَ ﴿١٧﴾ وَاِنْ تُكَذِّبُوا
فَقَدْ كَذَّبَ اُمَمٌ مِنْ قَبْلِكُمْۜ وَمَا عَلَى الرَّسُولِ اِلَّا
الْبَلَاغُ الْمُب۪ينُ ﴿١٨﴾ اَوَلَمْ يَرَوْا كَيْفَ يُبْدِئُ اللّٰهُ الْخَلْقَ ثُمَّ
يُع۪يدُهُۜ اِنَّ ذٰلِكَ عَلَى اللّٰهِ يَس۪يرٌ ﴿١٩﴾ قُلْ س۪يرُوا فِي الْاَرْضِ
فَانْظُرُوا كَيْفَ بَدَاَ الْخَلْقَ ثُمَّ اللّٰهُ يُنْشِئُ النَّشْاَةَ
الْاٰخِرَةَۜ اِنَّ اللّٰهَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَد۪يرٌۚ ﴿٢٠﴾ يُعَذِّبُ مَنْ يَشَٓاءُ
وَيَرْحَمُ مَنْ يَشَٓاءُۚ وَاِلَيْهِ تُقْلَبُونَ ﴿٢١﴾ وَمَٓا اَنْتُمْ بِمُعْجِز۪ينَ
فِي الْاَرْضِ وَلَا فِي السَّمَٓاءِۘ وَمَا لَكُمْ مِنْ دُونِ اللّٰهِ مِنْ
وَلِيٍّ وَلَا نَص۪يرٍۚ ﴿٢٢﴾ وَالَّذ۪ينَ كَفَرُوا بِاٰيَاتِ اللّٰهِ وَلِقَٓائِه۪
اُو۬لٰٓئِكَ يَئِسُوا مِنْ رَحْمَت۪ي وَاُو۬لٰٓئِكَ لَهُمْ عَذَابٌ اَل۪يمٌ ﴿٢٣﴾

**15**- Lê belê Me Nûh û xelkên di keştiyê de (ew ên ku wan pê bawerî anîbû) reha kirin û me ev (rûdan) kire îbretek ji bo alemê.

**16**- Me Îbrahîm jî (bi pêxemberî ji gelê wî re) şand. Wî ji gelê xwe re wiha got: Îbadetê Xwedê bikin û xwe ji ezabê wî biparêzin. Eger hûn zanibin, ev ji we re çêtir e.

**17**- Bi rastî ji bilî Xwedê Teala hûn bes ji pûtan re îbadetê dikin û hûn gotinên bêbinyat lê tînin. Bêguman ew pûtên ku ji bilî Xwedê hûn Îbadetê wan dikin, ew nikarin rizqê we bidin. Vêca hûn rizqê xwe ji Xwedê bixwazin, Îbadetê wî bikin û wî bişêkirînin; hûn ê bi bal ve bêne vegerandin.

**18**- Eger hûn bawerî neyînin vêca bi rastî umetên beriya we jî bawerî neanîbû. Li ser pêxember ji bilî teblîxa îslamê tu erkeke din nîn e.

**19**- Erê ma ew nabînin ku çawa Xwedê Teala ji tuneyî mirov afirandine piştî (mirinê) dîsa dê wan vegerîne? Bê guman ev li ber Xwedê hêsan e.

**20**- (Ji wan re) Bibêje: Ji xwe re bigerin, vêca binêrin ka çawa Xwedê cara pêşî ji tuneyî mirov afirandine, paşê Xwedê nifşê axîretê jî diafirîne. Bêguman Xwedê li ser her tiştî kara ye.

**21**- Xwedê kê bivê dide ezab, kê jî bivê lê tê rehmê. Hûn ê bes li Xwedê bêne vegerandin.

**22**- Hûn ê ne li ser erdê ne jî li asîmên Xwedê bêçare nehêlin. Ji Xwedê pê ve we ne dost û ne jî arîkarek heye.

**23**- Ew ên ku ayetên Xwedê û çûna hizûra wî mandel kirin, ha ew ji rehma min bêhêvî bûne û ji wan re ezabekî dijwar heye.

فَمَا كَانَ جَوَابَ قَوْمِهِ اِلَّا اَنْ قَالُوا اقْتُلُوهُ اَوْ حَرِّقُوهُ
فَاَنْجٰيهُ اللّٰهُ مِنَ النَّارِ اِنَّ فِي ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِقَوْمٍ
يُؤْمِنُونَ ﴿٢٤﴾ وَقَالَ اِنَّمَا اتَّخَذْتُمْ مِنْ دُونِ اللّٰهِ اَوْثَانًا
مَوَدَّةَ بَيْنِكُمْ فِي الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا ثُمَّ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ
يَكْفُرُ بَعْضُكُمْ بِبَعْضٍ وَيَلْعَنُ بَعْضُكُمْ بَعْضًا
وَمَاْوٰيكُمُ النَّارُ وَمَا لَكُمْ مِنْ نَاصِرِينَ ﴿٢٥﴾ فَاٰمَنَ
لَهُ لُوطٌ وَقَالَ اِنِّي مُهَاجِرٌ اِلٰى رَبِّي اِنَّهُ هُوَ الْعَزِيزُ
الْحَكِيمُ ﴿٢٦﴾ وَوَهَبْنَا لَهُ اِسْحٰقَ وَيَعْقُوبَ وَجَعَلْنَا
فِي ذُرِّيَّتِهِ النُّبُوَّةَ وَالْكِتَابَ وَاٰتَيْنَاهُ اَجْرَهُ فِي الدُّنْيَا
وَاِنَّهُ فِي الْاٰخِرَةِ لَمِنَ الصَّالِحِينَ ﴿٢٧﴾ وَلُوطًا اِذْ قَالَ لِقَوْمِهِ
اِنَّكُمْ لَتَاْتُونَ الْفَاحِشَةَ مَا سَبَقَكُمْ بِهَا مِنْ اَحَدٍ
مِنَ الْعَالَمِينَ ﴿٢٨﴾ اَئِنَّكُمْ لَتَاْتُونَ الرِّجَالَ وَتَقْطَعُونَ
السَّبِيلَ وَتَاْتُونَ فِي نَادِيكُمُ الْمُنْكَرَ فَمَا كَانَ جَوَابَ
قَوْمِهِ اِلَّا اَنْ قَالُوا ائْتِنَا بِعَذَابِ اللّٰهِ اِنْ كُنْتَ مِنَ
الصَّادِقِينَ ﴿٢٩﴾ قَالَ رَبِّ انْصُرْنِي عَلَى الْقَوْمِ الْمُفْسِدِينَ ﴿٣٠﴾

وَلَمَّا

**24**- Bersiva gelê Îbrahîm bes (ev) gotina wan bû: Îbrahîm bikujin, an jî bisojin! Lê belê Xwedê ew ji êgir xelas kir. Bi rastî di vê (xelaskirinê) de, ji bo civateke ku bawerî bîne, îbret hene.

**25**- (Îbrahîm ji wan re) Got: Bêguman ev a ku ji bilî Xwedê hûn pûtan dihebînin, ev di navbera we de hezjêkirineke dinyewî ye (teqez ev dê bi dawî bibe û dê were birîn). Paşê roja qiyametê hinek ji we dê hinekan înkar bikin û hûn ê lanetê li hev bînin. Êwirgeha we dojeh e û ji bo we tu arîkar jî tun in.

**26**- Vêca Lût bawerî bi Îbrahîmî anî. Îbrahîm wiha got: Bê guman ez ê hicretî bal Xwedayê xwe ve bikim. Bêguman Xwedayê min her ew e yê ezîz, yê elîm.

**27**- Me Îshaq û Yeqûb bexşî Îbrahîm kirin, Me pêxemberî û kitêb di kinêsa wî de gerandin, Me padaşa wî li cîhanê dayê û bêguman ew li axîretê jî ji qencîkaran e.

**28**- Me Lût jî (bi pêxemberî ji gelê wî re) şand. Wî ji gelê xwe re wiha got: Bi rastî hûn fehîşetiyeke wisa dikin ku beriya we ji alemê tu kesî ew (fehşîtî) nekiriye!

**29**- Erê ma hûn (piştî vê hişyarkirina îlahî) diçin cem zilaman, hûn riya dibirin û di civînên xwe de bêtoretiyê dikin?! Bersiva gelê wî tenê ev gotina wan bû: Eger bi rastî tu rast dibêjî de heydê ezabê Xwedê ji bo me bîne!

**30**- Lût wiha dua kir: Xwedayê min! Li hemberî vê civata jirêderketî arîkariya min bike.

وَلَمَّا جَٓاءَتْ رُسُلُنَٓا اِبْرٰهٖيمَ بِالْبُشْرٰىۙ قَالُٓوا اِنَّا مُهْلِكُٓوا
اَهْلِ هٰذِهِ الْقَرْيَةِۚ اِنَّ اَهْلَهَا كَانُوا ظَالِمٖينَۚ ﴿٣١﴾
قَالَ اِنَّ فٖيهَا لُوطًاۜ قَالُوا نَحْنُ اَعْلَمُ بِمَنْ فٖيهَاۘ
لَنُنَجِّيَنَّهُ وَاَهْلَهُٓ اِلَّا امْرَاَتَهُۘ كَانَتْ مِنَ الْغَابِرٖينَ ﴿٣٢﴾
وَلَمَّٓا اَنْ جَٓاءَتْ رُسُلُنَا لُوطًا سٖٓيءَ بِهِمْ وَضَاقَ بِهِمْ
ذَرْعًا وَقَالُوا لَا تَخَفْ وَلَا تَحْزَنْ اِنَّا مُنَجُّوكَ
وَاَهْلَكَ اِلَّا امْرَاَتَكَ كَانَتْ مِنَ الْغَابِرٖينَ ﴿٣٣﴾ اِنَّا
مُنْزِلُونَ عَلٰٓى اَهْلِ هٰذِهِ الْقَرْيَةِ رِجْزًا مِنَ السَّمَٓاءِ بِمَا
كَانُوا يَفْسُقُونَ ﴿٣٤﴾ وَلَقَدْ تَرَكْنَا مِنْهَٓا اٰيَةً بَيِّنَةً
لِقَوْمٍ يَعْقِلُونَ ﴿٣٥﴾ وَاِلٰى مَدْيَنَ اَخَاهُمْ شُعَيْبًاۙ فَقَالَ
يَا قَوْمِ اعْبُدُوا اللّٰهَ وَارْجُوا الْيَوْمَ الْاٰخِرَ وَلَا تَعْثَوْا
فِى الْاَرْضِ مُفْسِدٖينَ ﴿٣٦﴾ فَكَذَّبُوهُ فَاَخَذَتْهُمُ الرَّجْفَةُ
فَاَصْبَحُوا فٖى دَارِهِمْ جَاثِمٖينَۘ ﴿٣٧﴾ وَعَادًا وَثَمُودَا وَقَدْ
تَبَيَّنَ لَكُمْ مِنْ مَسَاكِنِهِمْ وَزَيَّنَ لَهُمُ الشَّيْطَانُ اَعْمَالَهُمْ
فَصَدَّهُمْ عَنِ السَّبٖيلِ وَكَانُوا مُسْتَبْصِرٖينَۙ ﴿٣٨﴾

31- Gava ku qasidên me mizgînî ji Îbrahîm re anî (jê re wiha) gotin: Em ê gelê vî welatî (Sedomê yê gelê Lût) helak bikin. Bêguman gelê wî her sitemkar in.

32- Îbrahîm ji qasidan re got: Ma ne Lût tê de ye! Qasidan got: Em bêhtir dizanin ka kî tê de ye. Misoger em ê Lût û malbata wî rizgar bikin, ji bilî jina wî; ew ji yên ku hilak bûne.

33- Dema qasidên me hatin cem Lût, ew (ji tirsa destdirêjiya li ser wan) bi hatina wan xemgîn bû û ji taqet ket. Qasidan jê re got: Metirse û xemgîn mebe! Bêguman em ê te û malbata te rizgar bikin, ji bilî jina te; ew ji yên ku hilak bûne.

34- Bêguman em ê bi ser xelkê vî welatî de, ji ber jirêderketina wan ezabekî (dijwar) ji esmên bînin xwarê.

35- Sond be, me ji wî gundî ji bo miletekî ku tê bigihîje nîşaneke aşkera hêlaye.

36- Me ji (gelê) Medyenê re jî (bi pêxemberî) birayê wan Şûeyb şandiye û wî wiha got: Gelî miletê min! Îbadetê Xwedê Teala bikin, hêviya xwe bi roja axîretê ve girêbidin û li ser rûyê erdê bi fesadî tevdanê dernexin!

37- Lê belê wan bi Şûeyb bawerî neanî, vêca wê erdheja cansoj ew girtin, îcar li ser çokan di xaniyê xwe de mirî û bêbizav man.

38- Me Ad û Semûd jî (birin helakê). Teqez ji bo we (tiştê ku hatiye serê wan) ji cih û warên wan aşkera tê zanîn. Bêguman şeytan ji wan re kirinên wan spehî nîşan dan û ew ji riya heq deranîn. Hal ev e ku ew bi xwe bîrewer bûn.

وَقَارُونَ وَفِرْعَوْنَ وَهَامَانَ وَلَقَدْ جَٓاءَهُمْ مُوسٰى
بِالْبَيِّنَاتِ فَاسْتَكْبَرُوا فِى الْاَرْضِ وَمَا كَانُوا
سَابِقِينَ ﴿٣٩﴾ فَكُلًّا اَخَذْنَا بِذَنْبِه۪ فَمِنْهُمْ مَنْ اَرْسَلْنَا
عَلَيْهِ حَاصِبًا وَمِنْهُمْ مَنْ اَخَذَتْهُ الصَّيْحَةُ وَمِنْهُمْ
مَنْ خَسَفْنَا بِهِ الْاَرْضَ وَمِنْهُمْ مَنْ اَغْرَقْنَا وَمَا كَانَ
اللّٰهُ لِيَظْلِمَهُمْ وَلٰكِنْ كَانُٓوا اَنْفُسَهُمْ يَظْلِمُونَ ﴿٤٠﴾
مَثَلُ الَّذ۪ينَ اتَّخَذُوا مِنْ دُونِ اللّٰهِ اَوْلِيَٓاءَ كَمَثَلِ
الْعَنْكَبُوتِ اِتَّخَذَتْ بَيْتًا وَاِنَّ اَوْهَنَ الْبُيُوتِ لَبَيْتُ
الْعَنْكَبُوتِ لَوْ كَانُوا يَعْلَمُونَ ﴿٤١﴾ اِنَّ اللّٰهَ يَعْلَمُ
مَا يَدْعُونَ مِنْ دُونِه۪ مِنْ شَيْءٍ وَهُوَ الْعَز۪يزُ الْحَك۪يمُ ﴿٤٢﴾
وَتِلْكَ الْاَمْثَالُ نَضْرِبُهَا لِلنَّاسِ وَمَا يَعْقِلُهَٓا اِلَّا الْعَالِمُونَ
﴿٤٣﴾ خَلَقَ اللّٰهُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ بِالْحَقِّ اِنَّ ف۪ى ذٰلِكَ
لَاٰيَةً لِلْمُؤْمِن۪ينَ ﴿٤٤﴾ اُتْلُ مَٓا اُو۫حِىَ اِلَيْكَ مِنَ الْكِتَابِ
وَاَقِمِ الصَّلٰوةَ اِنَّ الصَّلٰوةَ تَنْهٰى عَنِ الْفَحْشَٓاءِ وَالْمُنْكَرِ
وَلَذِكْرُ اللّٰهِ اَكْبَرُ وَاللّٰهُ يَعْلَمُ مَا تَصْنَعُونَ ﴿٤٥﴾

وَلَا

39- Me Qarûn, Firewn û Haman jî (birin helakê). Sond be Mûsa ayet ji wan re anîbûn, vêca wan li ser erdê xwe qure kirin û ew nikarin zora me bibin.

40- Me her yek ji wan (ê ku me gotin) ji ber gunehên wan, bi ezab ew girtin. Hin ji wan me kevir bi ser wan de barandin, hin ji wan qîrîna cansoj ew hingaftin, hin ji wan me ew di erdê de kirin xwarê û hin ji wan me ew di avê de xeniqandine. Xwedê ne ew e ku zilmê li wan bike, lê belê ew bi xwe zilmê li xwe dikin.

41- Mînaka wan ên ku ji bilî Xwedê ji xwe re dost û arîkar girtine, eynî mîna konê tevnepîrê ye. Hal ev e ku mala herî weza konê tevnepîrê ye. Eger wan ev bizaniba (dê perestina wan pûtan nekiribûna).

Tevnepîr heywaneke pir qels e. Her wiha mala wê jî pir weza ye. Ew kesê ku xwe li mala wê bigre wekî ku xwe ji ber şirikê bide ber mezrîbê, yanî hê bêhtir şil û pil dibe, zerarê dibîne. Vêca ew kesê ku dev ji Xwedê berde û pûtan ji bo xwe bike dost û arîkar, rewşa wî mîna rewşa yê xwe bavêje ber stare tevnepirkê.

42- Bêguman Xwedê Teala dizane ku ew ên ji bilî Xwedê ji wan re îbadetê dikin, ne tiştek in. Her Xwedê ye yê serdest, yê xweyhîkmet.

43- Em van mînakan ji bo mirovan derb û mesel tînin, ji yên zana pê ve kes tê nagihîjin.

44- Xwedê Teala erd û asîman bi edaletî afirandine. Bêguman di vê de ji bo bawermendan nîşanek heye.

45- (Ya Muhammed!) Ev wehya ku ji vê Quranê ji te re hatî bixwîne û bi awayê pêdivî nimêj bike. Bêguman nimêj mirov ji neqencî û bêtoretiyan dûr digire. Baweriya bi Xwedê û tewhîda nav û sîfatên wî ji her îbadetê mezintir e. Xwedê bi ya ku hûn dikin dizane.

وَلَا تُجَادِلُوا اَهْلَ الْكِتَابِ اِلَّا بِالَّتِى هِىَ اَحْسَنُ
اِلَّا الَّذِينَ ظَلَمُوا مِنْهُمْ وَقُولُوا اٰمَنَّا بِالَّذِىٓ اُنْزِلَ اِلَيْنَا
وَاُنْزِلَ اِلَيْكُمْ وَاِلٰهُنَا وَاِلٰهُكُمْ وَاحِدٌ وَنَحْنُ لَهُ مُسْلِمُونَ
﴿٤٦﴾ وَكَذٰلِكَ اَنْزَلْنَٓا اِلَيْكَ الْكِتَابَ فَالَّذِينَ اٰتَيْنَاهُمُ
الْكِتَابَ يُؤْمِنُونَ بِهٖ وَمِنْ هٰٓؤُلَٓاءِ مَنْ يُؤْمِنُ بِهٖ وَمَا
يَجْحَدُ بِاٰيَاتِنَٓا اِلَّا الْكَافِرُونَ ﴿٤٧﴾ وَمَا كُنْتَ تَتْلُوا
مِنْ قَبْلِهٖ مِنْ كِتَابٍ وَلَا تَخُطُّهُ بِيَمِينِكَ اِذًا لَارْتَابَ
الْمُبْطِلُونَ ﴿٤٨﴾ بَلْ هُوَ اٰيَاتٌ بَيِّنَاتٌ فِى صُدُورِ الَّذِينَ
اُوتُوا الْعِلْمَ وَمَا يَجْحَدُ بِاٰيَاتِنَٓا اِلَّا الظَّالِمُونَ ﴿٤٩﴾ وَقَالُوا
لَوْلَٓا اُنْزِلَ عَلَيْهِ اٰيَاتٌ مِنْ رَبِّهٖ قُلْ اِنَّمَا الْاٰيَاتُ عِنْدَ اللّٰهِ
وَاِنَّمَٓا اَنَا نَذِيرٌ مُبِينٌ ﴿٥٠﴾ اَوَلَمْ يَكْفِهِمْ اَنَّٓا اَنْزَلْنَا
عَلَيْكَ الْكِتَابَ يُتْلٰى عَلَيْهِمْ اِنَّ فِى ذٰلِكَ لَرَحْمَةً
وَذِكْرٰى لِقَوْمٍ يُؤْمِنُونَ ﴿٥١﴾ قُلْ كَفٰى بِاللّٰهِ بَيْنِى وَبَيْنَكُمْ
شَهِيدًا يَعْلَمُ مَا فِى السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَالَّذِينَ
اٰمَنُوا بِالْبَاطِلِ وَكَفَرُوا بِاللّٰهِ اُولٰٓئِكَ هُمُ الْخَاسِرُونَ ﴿٥٢﴾

**46**- Li hember xweykitêban bi ya herî spehî têbikoşin. Lê belê ew ên ku ji wan zilim kirin, ew cuda ne. Bibêjin: Me bi ya ku ji me re hatiye hinartin û bi ya ku ji we re jî hatiye hinartin bawerî aniye. Xwedayê me û Xwadeyê we jî yek e û em jê re berdest bûne.

**47**- (Ya Muhemmed!) Çawa me kitêb ji pêxemberên beriya te re hinartiye her wisa me ji te re jî Quran hinartiye. Vêca ew ên ku me kitêb ji wan re hinartiye bawerî pê tînin û ji van (ereban) jî yên ku bawerî tînin hene. Ji bilî kafiran kes Quranê înkar nake.

**48**- (Ya Muhemmed!) Te beriya vê Quranê, ne nivîsek dixwend ne jî bi destê xwe xetek dinivîsand. Eger te xwendin û nivîsîn zanîbûya, wê demê dê kafiran der barê Quranê de guman bikira.

**49**- Nexêr ne wekî ew hizir dikin, belkî ev Quran nîşanên aşkera ne di sînga wan de, yên ku ji wan re zanîn hatiye dayîn. Ji zaliman pê ve kes ayetên me mandel nake.

**50**- Gotin: De bila ji Xwedayê wî hin mucîze jê re bihatina. Bibêje: Mucîze bes li cem Xwedê ne (ew çawa bivê wisa dişîne). Bêguman ez tenê hişyarkerekî aşkera me.

**51**- Erê ma (bi mucîzetî) ne besî wan e ku Me ev Quran ji te re hinartiye ku ji wan re tê xwendin? Bêguman di vê Quranê de ji bo miletekî ku bawerî bîne rehmet û bîranîn heye.

**52**- (Resûlê min!) Bibêje: Di neqeba min û we de bi şahidî Xwedê bes e. Ew, bi tiştê ku di erd û asîmanan de heye dizane. Ew ên ku wan bi batilî bawerî aniye û Xwedê Teala mandel kirine, ha ew in ên xesirîne.

وَيَسْتَعْجِلُونَكَ بِالْعَذَابِ وَلَوْلَٓا اَجَلٌ مُسَمًّى لَجَٓاءَهُمُ الْعَذَابُ
وَلَيَأْتِيَنَّهُمْ بَغْتَةً وَهُمْ لَا يَشْعُرُونَ ﴿٥٣﴾ يَسْتَعْجِلُونَكَ بِالْعَذَابِ
وَاِنَّ جَهَنَّمَ لَمُحِيطَةٌ بِالْكَافِرِينَ ﴿٥٤﴾ يَوْمَ يَغْشٰيهُمُ الْعَذَابُ
مِنْ فَوْقِهِمْ وَمِنْ تَحْتِ اَرْجُلِهِمْ وَيَقُولُ ذُوقُوا مَا كُنْتُمْ
تَعْمَلُونَ ﴿٥٥﴾ يَا عِبَادِيَ الَّذِينَ اٰمَنُٓوا اِنَّ اَرْضٖي وَاسِعَةٌ فَاِيَّايَ
فَاعْبُدُونِ ﴿٥٦﴾ كُلُّ نَفْسٍ ذَٓائِقَةُ الْمَوْتِ ثُمَّ اِلَيْنَا تُرْجَعُونَ
﴿٥٧﴾ وَالَّذِينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ لَنُبَوِّئَنَّهُمْ مِنَ الْجَنَّةِ
غُرَفًا تَجْرِي مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ خَالِدِينَ فِيهَا نِعْمَ اَجْرُ الْعَامِلِينَ
﴿٥٨﴾ اَلَّذِينَ صَبَرُوا وَعَلٰى رَبِّهِمْ يَتَوَكَّلُونَ ﴿٥٩﴾ وَكَاَيِّنْ مِنْ دَٓابَّةٍ
لَا تَحْمِلُ رِزْقَهَا اَللّٰهُ يَرْزُقُهَا وَاِيَّاكُمْ وَهُوَ السَّمِيعُ الْعَلِيمُ
﴿٦٠﴾ وَلَئِنْ سَاَلْتَهُمْ مَنْ خَلَقَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ وَسَخَّرَ الشَّمْسَ
وَالْقَمَرَ لَيَقُولُنَّ اللّٰهُ فَاَنّٰى يُؤْفَكُونَ ﴿٦١﴾ اَللّٰهُ يَبْسُطُ الرِّزْقَ لِمَنْ
يَشَٓاءُ مِنْ عِبَادِهٖ وَيَقْدِرُ لَهُ اِنَّ اللّٰهَ بِكُلِّ شَيْءٍ عَلِيمٌ ﴿٦٢﴾ وَلَئِنْ
سَاَلْتَهُمْ مَنْ نَزَّلَ مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءً فَاَحْيَا بِهِ الْاَرْضَ مِنْ بَعْدِ
مَوْتِهَا لَيَقُولُنَّ اللّٰهُ قُلِ الْحَمْدُ لِلّٰهِ بَلْ اَكْثَرُهُمْ لَا يَعْقِلُونَ ﴿٦٣﴾
وَمَا

53- Ew ji te lezkirina ezab dixwazin. Eger dema ezabdayîna wan nehatibûya danîn dê ezab ji bo wan bihata. Sond be, teqez ezab ji nişka ve dê bi ser wan de bê û ew li xwe hay nabin.

54- Ew ji te lezkirina ezab dixwazin, bêguman cehenemê dor li kafiran girtiye.

55- Wê rojê ezab dê wan (kafiran) hem ji ser wan ve hem ji bin wan ve wan bigire. Xwedê jî dê ji wan re bibêje: De (cezayê) ya ku we kiriye tehm bikin!

56- Gelî bendeyên min ên ku bawerî anîne! Bêguman erda min fireh e. Vêca bi bal cihekî ewle ve hicret bikin û her ji min re îbadetê bikin.

Misliman, divê li welatekî ku nikaribe îbadetê Rebbê xwe bike, nemîne. Erda Xwedê fereh e. Ev ayeta pîroz dide zanîn ku li ser mirovê misliman ferz e ku hicretî welatê îslamê bike.

57- Her xwedîruh dê mirinê tehm bike. Paşê hûn ê li me bêne vegerandin.

58- Ew ên ku bawerî anîn û karên qenc kirine, em ê wan li bihiştê di koşkên bilind de bi cih bikin ku di bin wan re çem diherikin û ew her û her dê li wan bimînin. Çi rind xelat e, xelata yên ku karên qenc kirin!

59- (Ew bihiştên hatine gotin, ji bo wan kesan in,) ew ên ku sebir kişandine û xwe bes disipêrin Xwedayê xwe.

60- Gelek heywan hene ku rizqê wan ne li ser pişta wan e. Xwedê rizqê wan û yê we jî dide. Ew e yê bihîzer, ê zana.

61- Sond be, eger tu ji kafiran pipirsî; yê ku erd û asîmanan afirandine, yê ku roj û heyv misixur kirine, kî ye? Teqez ew dê bibêjin: Ellah Teala ye. Nexwe ew çima berê xwe (ji heqiyê) vedigerînin?

62- Xwedê Teala, ji bendeyên xwe kê bivê (ji bo ceribandinê) rizqê wî fireh dike, kê jî bivê rizqê wî teng dike. Bêguman Xwedê bi her tiştî zana ye.

63- Sond be, eger tu ji kafiran bipirsî, ew ê ku ji ewran avê dadixe û erdê pê hêşîn dike piştî ku hişk bûbû, kî ye? Teqez ew dê bibêjin: Ellah Teala ye. Bibêje: Pesn û şêkirî her ji Ellah Teala re be (ku wan bi xwe ev iqrar kir ku xaliqê mutleq Ellah teala ye), lê belê pirên wan tênagihîjin.

وما هذه الحيوة الدنيا الا لهو ولعب وان الدار الاخرة
لهي الحيوان لو كانوا يعلمون ﴿٦٤﴾ فاذا ركبوا في الفلك
دعوا الله مخلصين له الدين فلما نجيهم الى البر اذا هم
يشركون ﴿٦٥﴾ ليكفروا بما اتيناهم وليتمتعوا فسوف
يعلمون ﴿٦٦﴾ اولم يروا انا جعلنا حرما امنا ويتخطف
الناس من حولهم افبالباطل يؤمنون وبنعمة الله
يكفرون ﴿٦٧﴾ ومن اظلم ممن افترى على الله كذبا او كذب
بالحق لما جاءه اليس في جهنم مثوى للكافرين ﴿٦٨﴾ والذين
جاهدوا فينا لنهدينهم سبلنا وان الله لمع المحسنين ﴿٦٩﴾




بسم الله الرحمن الرحيم

الم ﴿١﴾ غلبت الروم ﴿٢﴾ في ادنى الارض وهم من بعد غلبهم
سيغلبون ﴿٣﴾ في بضع سنين لله الامر من قبل ومن بعد ويومئذ
يفرح المؤمنون ﴿٤﴾ بنصر الله ينصر من يشاء وهو العزيز الرحيم ﴿٥﴾

**64**- Ev jiyana cîhanê tenê kêf û lîstik e. Herçî ku mala axiretê ye, ha ew jiyana rasteqîne ye. Eger wan ev bizaniya (teqez dê dinya di ser axiretê re negirtina).

**65**- Vêca dema ku ew li keştiyê siwar dibin, bi dilekî safî ew hawara xwe digihînin Ellah Teala. Lê dema ew bi selametî wan derdixe bejê, ha te dît ku wa ye ji Ellah Teala re şerîkan çêdikin.

**66**- Bila ew di biwara nîmetên ku me dane wan de nankoriyê bikin û bila xweş bijîn, paşê ew ê bizanin (ka çi yê bê sere wan)!

**67**- Ma ew nabînin ku me (welatê wan Mekke) kiriye warekî rêzdar û ewle? Hal ev e ku li hawîrdora wan mirov têne revandin (têne kuştin û dîl têne girtin). Erê ma hê jî ew bi pûçiyê bawer dikin û der barê nîmetên Ellah Teala de nankoriyê dikin?

**68**- Erê ma ji wî kesê ku li ser navê Xwedê bi derewî xeber bide, yan jî bi wê wehya ku ji pêxemberê wî re hatiye bawerî neyîne, zalimtir kî heye? Erê ma di cehenemê de ji bo kafiran cih tune ye?!

**69**- Ew ên ku ji bo me cîhad kirin, teqez em ê wan li ser rêkên xwe rasterê bikin. Bêguman Ellah Teala her digel qencîkarên rast û durist e.

## SÛREYÊ RÛM

Sûreyê Rûm, 60 (şêst) ayet e. Li Mekkê daketiye. Ji ber ku Sûre behsa wan rûmiyan kiriye ku di wî şerî de têk çûne ku li hemberî mecûsiyan kiribûn, jê re Sûreyê Rûm hatiye gotin.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

**1**- Elîf, Lam, Mîm.

**2**- Rûm, hate şikandin (bi destê fursê/farisan).

**3**- Li erda herî nêzîk (nêzîkî Mekkeyê). Ew piştî vê têkçûnê dê bi ser bikevin (û furs dê têk here).

**4**- Ev jî di nava çend salan de, di pêşî û paşiyê de ferman her ya Xwedê Teala ye. Di wê rojê de bi ya ku ew bi ser dikevin bawermend jî dilşad dibin.

**5**- Dilşadî her bi arîkariya Xwedê ye. Xwedê kê bivê arîkariya wî dike. Xwedê her ew e yê serdest, yê dilovîn.

وَعْدَ اللّٰهِ لَا يُخْلِفُ اللّٰهُ وَعْدَهُ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَ النَّاسِ لَا يَعْلَمُونَ
﴿٦﴾ يَعْلَمُونَ ظَاهِرًا مِنَ الْحَيٰوةِ الدُّنْيَا وَهُمْ عَنِ الْاٰخِرَةِ هُمْ
غَافِلُونَ ﴿٧﴾ اَوَلَمْ يَتَفَكَّرُوا فٖى اَنْفُسِهِمْ مَا خَلَقَ اللّٰهُ السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضَ وَمَا بَيْنَهُمَا اِلَّا بِالْحَقِّ وَاَجَلٍ مُسَمًّى وَاِنَّ كَثٖيرًا
مِنَ النَّاسِ بِلِقَائِ رَبِّهِمْ لَكَافِرُونَ ﴿٨﴾ اَوَلَمْ يَسٖيرُوا فِى الْاَرْضِ
فَيَنْظُرُوا كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ الَّذٖينَ مِنْ قَبْلِهِمْ كَانُوا
اَشَدَّ مِنْهُمْ قُوَّةً وَاَثَارُوا الْاَرْضَ وَعَمَرُوهَا اَكْثَرَ مِمَّا
عَمَرُوهَا وَجَاءَتْهُمْ رُسُلُهُمْ بِالْبَيِّنَاتِ فَمَا كَانَ اللّٰهُ لِيَظْلِمَهُمْ
وَلٰكِنْ كَانُوا اَنْفُسَهُمْ يَظْلِمُونَ ﴿٩﴾ ثُمَّ كَانَ عَاقِبَةَ الَّذٖينَ
اَسَاؤُا السُّوٰاٰى اَنْ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِ اللّٰهِ وَكَانُوا بِهَا يَسْتَهْزِؤُنَ
﴿١٠﴾ اَللّٰهُ يَبْدَؤُا الْخَلْقَ ثُمَّ يُعٖيدُهُ ثُمَّ اِلَيْهِ تُرْجَعُونَ ﴿١١﴾
وَيَوْمَ تَقُومُ السَّاعَةُ يُبْلِسُ الْمُجْرِمُونَ ﴿١٢﴾ وَلَمْ يَكُنْ لَهُمْ
مِنْ شُرَكَائِهِمْ شُفَعٰؤُا وَكَانُوا بِشُرَكَائِهِمْ كَافِرٖينَ
﴿١٣﴾ وَيَوْمَ تَقُومُ السَّاعَةُ يَوْمَئِذٍ يَتَفَرَّقُونَ ﴿١٤﴾ فَاَمَّا الَّذٖينَ
اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ فَهُمْ فٖى رَوْضَةٍ يُحْبَرُونَ ﴿١٥﴾

وَاَمَّا

**6**- (Ev serkeftin) peymana Xwedê ye. Xwedê ji peymana xwe venagere, lê belê pirên mirovan nizanin.

**7**- Ew ji jiyana cîhanê ya li ber çavan dizanin, ew bi xwe ji jiyana axretê bêhay in.

**8**- Erê ma ew di çêkirina xwe de nafikirin ku Xwedê erd û asîman û yên di navbera wan de hene bes bi heqî û ji bo demeke navlêkirî afirandine? Bêguman ji mirovan pir kes hene ku bi çûna ber destê Xwedê bawerî nayînin.

**9**- Ma ew li ser rûyê erdê negeriyane, vêca ku binêrin ka encama umetên beriya wan (ew ên ku bawerî bi pêxemberê xwe neanîne) çawa bûye? Ku ew bi xwe jî, ji wan xurttir bûn û wan erd bêhtir cot kiribûn û bêhtir avasaz kiribûn. Pêxemberên wan jî ji wan re gelek delîl û mucîzeyên aşkera anîbûn. Vêca Xwedê ne ew bû ku zilmê li wan bike, lê belê wan bi xwe zilm li xwe dikir.

**10**- Paşê domahîka gunehkaran ji ber ku wan bi ayetên Xwedê bawerî neanîbû û pê tinaz dikirin, bû pîstirîn domahîk.

**11**- Xwedê mirovan ji nebûnê diafirîne, piştî (mirinê) wî vedijîne, paşê hûn ê bi bal ve bêne vegerandin.

**12**- Roja ku qiyamet radibe, gunehkar bêhêvî û bêdeng dimînin.

**13**- Ji bo wan ji wan hevpişkên wan (ew ên ku ji Xwedê Teala re dikin şerîk) tu kes nabe mehdervan û (piştî ku dîtin tu feydeyê ji wan nabînin) ew ê hevpişkên xwe jî mandel bikin.

**14**- Roja qiyamet radibe, wê rojê (mumîn û kafir) ji hev diqetin.

**15**- Vêca herçî ew ên ku wan bawerî aniye û karên qencî kirine, ew di nav baxçeyên bihiştê de kêfxweş dibin

**16**- Herçî ew ên ku kafir bûne û wan bi ayetên me û bi roja qiyametê bawerî neaniye, vêca ha ew di ezab de tên komkirin.

**17**- Vêca dema li we bû êvar û dema li we bû sibeh, Xwedê ji her kêmasiyê pak bidêrin.

**18**- Paşiya rojê û dema ku li we bû nîvro, li erd û asîmanan pesn û şêkirî her jê re ye.

Ebdullahê kurê Ebbas (r) gotiye: Her pênc nimêjên ferz di vê ayetê de hatine diyarkirin, lewra; di hevoka "dema li we bû êvar du nimêj; mexreb û eşa, di ayeta "li we bû sibeh" de nimêja sibehê heye. Di ya paşiya rojê de, nimêja esrê heye û di ya dema nîvro de jî nimêja nîvroyê heye.

**19**- Xwedê Teala yê sax ji yê mirî derdixe û yê mirî jî ji yê sax derdixe, ew erdê piştî mirina/hişkbûna wê zindî dike û her wisa hûn jî dê (ji gorên xwe) bêne deranîn.

**20**- Ji nîşanên (qudreta) Xwedê Teala ye ku hûn ji axê afirandine, piştre hûn bûne mirov û (li ser erdê) belav dibin.

**21**- Ji nîşanên (qudreta) Xwedê Teala ye ku ji bo we, ji we bi xwe jin afirandine da ku sebir û hedana we bi wan bê û hezkirin û lihevbanîn di navbera we de peyda kiriye. Bêguman di vê de ji bo miletekî ku bifikirin, îbret hene.

**22**- Ji nîşanên (qudreta) Xwedê ye ku erd û asîman afirandine, zimanên we û rengên we ji hev cuda çêkirine. Bêguman di vê de ji bo mirovên zana ders û îbret hene.

Newekhevbûna zimanê mirovan dide nîşan ku xaliqê wan çi qas mezin û hekîm e. Lewra digel ku eslê wan yek e jî lê dîsa zimanê wan û rengê wan ne yek in. Bi rastî ev ayet, bi kurtî ramana îslamê ya di bara ziman û rengan de eşkere dike. Her wiha dide zanîn

٤٠٧ الجزء الحادي والعشرون

وَاَمَّا الَّذِينَ كَفَرُوا وَكَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا وَلِقَٓائِ الْاٰخِرَةِ
فَاُولٰٓئِكَ فِى الْعَذَابِ مُحْضَرُونَ ﴿١٦﴾ فَسُبْحَانَ اللّٰهِ حِينَ
تُمْسُونَ وَحِينَ تُصْبِحُونَ ﴿١٧﴾ وَلَهُ الْحَمْدُ فِى السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضِ وَعَشِيًّا وَحِينَ تُظْهِرُونَ ﴿١٨﴾ يُخْرِجُ الْحَىَّ مِنَ
الْمَيِّتِ وَيُخْرِجُ الْمَيِّتَ مِنَ الْحَىِّ وَيُحْيِ الْاَرْضَ بَعْدَ
مَوْتِهَا وَكَذٰلِكَ تُخْرَجُونَ ﴿١٩﴾ وَمِنْ اٰيَاتِهِ اَنْ خَلَقَكُمْ مِنْ
تُرَابٍ ثُمَّ اِذَٓا اَنْتُمْ بَشَرٌ تَنْتَشِرُونَ ﴿٢٠﴾ وَمِنْ اٰيَاتِهِ
اَنْ خَلَقَ لَكُمْ مِنْ اَنْفُسِكُمْ اَزْوَاجًا لِتَسْكُنُٓوا
اِلَيْهَا وَجَعَلَ بَيْنَكُمْ مَوَدَّةً وَرَحْمَةً اِنَّ فِى ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ
لِقَوْمٍ يَتَفَكَّرُونَ ﴿٢١﴾ وَمِنْ اٰيَاتِهِ خَلْقُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ
وَاخْتِلَافُ اَلْسِنَتِكُمْ وَاَلْوَانِكُمْ اِنَّ فِى ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِلْعَالِمِينَ
﴿٢٢﴾ وَمِنْ اٰيَاتِهِ مَنَامُكُمْ بِالَّيْلِ وَالنَّهَارِ وَابْتِغَٓاؤُكُمْ
مِنْ فَضْلِهِ اِنَّ فِى ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِقَوْمٍ يَسْمَعُونَ ﴿٢٣﴾ وَمِنْ اٰيَاتِهِ
يُرِيكُمُ الْبَرْقَ خَوْفًا وَطَمَعًا وَيُنَزِّلُ مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءً فَيُحْيِ
بِهِ الْاَرْضَ بَعْدَ مَوْتِهَا اِنَّ فِى ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِقَوْمٍ يَعْقِلُونَ ﴿٢٤﴾

ku di îslamê de ziman tev wekhev bi nirx in û navgîna jihevfêmkirinê ne. Li gorî fehma ji vê ayetê, însanê ku înkara zimanekî bike her wekî ku înkara nîşanekê ji nîşanên qudreta Xwedê bike û li ber xaliqiyeta Xwedê rabe. Mirovê ku zimanekî qedexe bike û milletekî asîmîle bike ew her wekî ku li hemberî Xwedê serî hilde, vêca kar û hikmeta wî qebûl neke. Hîç mafê tu kes û çu sazûmanê tun e ku bi tu behaneyê perwerdeya milletekî bi zimanê wî qedexe bike.

**23**- Ji nîşanên (qudreta) Xwedê ye ku hûn di şev û rojê de radizin û hûn di wan de ji kerema Xwedê daxwaza rizqê xwe dikin. Bêguman di vê de ji bo miletekî ku guhdarî bikin, îbret hene.

**24**- Ji nîşanên (qudreta) Xwedê ye ku birûskê bitirs û bihêvî nîşanî we dide. Ji ewran avê dibarîne û bi wê piştî hişkbûna erdê, wê hêşîn dike. Bêguman di vê de ji bo miletekî ku têbigihîjin îbret hene.

وَمِنْ اٰيَاتِه۪ٓ اَنْ تَقُومَ السَّمَٓاءُ وَالْاَرْضُ بِاَمْرِه۪ۜ ثُمَّ اِذَا دَعَاكُمْ
دَعْوَةً مِنَ الْاَرْضِ اِذَٓا اَنْتُمْ تَخْرُجُونَ ﴿٢٥﴾ وَلَهُ مَنْ فِي
السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ كُلٌّ لَهُ قَانِتُونَ ﴿٢٦﴾ وَهُوَ الَّذ۪ي
يَبْدَؤُا الْخَلْقَ ثُمَّ يُع۪يدُهُ وَهُوَ اَهْوَنُ عَلَيْهِۜ وَلَهُ الْمَثَلُ
الْاَعْلٰى فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۚ وَهُوَ الْعَز۪يزُ الْحَك۪يمُ
﴿٢٧﴾ ضَرَبَ لَكُمْ مَثَلًا مِنْ اَنْفُسِكُمْۜ هَلْ لَكُمْ مِنْ
مَا مَلَكَتْ اَيْمَانُكُمْ مِنْ شُرَكَٓاءَ ف۪ي مَا رَزَقْنَاكُمْ
فَاَنْتُمْ ف۪يهِ سَوَٓاءٌ تَخَافُونَهُمْ كَخ۪يفَتِكُمْ اَنْفُسَكُمْۜ كَذٰلِكَ
نُفَصِّلُ الْاٰيَاتِ لِقَوْمٍ يَعْقِلُونَ ﴿٢٨﴾ بَلِ اتَّبَعَ الَّذ۪ينَ
ظَلَمُٓوا اَهْوَٓاءَهُمْ بِغَيْرِ عِلْمٍۚ فَمَنْ يَهْد۪ي مَنْ اَضَلَّ اللّٰهُۜ وَمَا
لَهُمْ مِنْ نَاصِر۪ينَ ﴿٢٩﴾ فَاَقِمْ وَجْهَكَ لِلدّ۪ينِ حَن۪يفًاۜ فِطْرَتَ
اللّٰهِ الَّت۪ي فَطَرَ النَّاسَ عَلَيْهَاۜ لَا تَبْد۪يلَ لِخَلْقِ اللّٰهِۜ ذٰلِكَ الدّ۪ينُ
الْقَيِّمُۙ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَ النَّاسِ لَا يَعْلَمُونَۙ ﴿٣٠﴾ مُن۪يب۪ينَ اِلَيْهِ وَاتَّقُوهُ
وَاَق۪يمُوا الصَّلٰوةَ وَلَا تَكُونُوا مِنَ الْمُشْرِك۪ينَۙ ﴿٣١﴾ مِنَ الَّذ۪ينَ
فَرَّقُوا د۪ينَهُمْ وَكَانُوا شِيَعًاۜ كُلُّ حِزْبٍ بِمَا لَدَيْهِمْ فَرِحُونَ ﴿٣٢﴾

حِزْبٌ

وَاِذَا

**25**- Ji nîşanên (qudreta) Xwedê Teala ye ku erd û asîman bi fermana wî xwe radigirin. Paşê eger (roja qiyametê) bi yek gaziyekê gazî we bike (ku bibêje, ji erdê derkevin) di cih de hûn ê ji gorên xwe bêne der.

**26**- Her çiqas ên li erd û asîmanan hene ew tev yên Xwedê ne. Tev li ber emir û fermana wî ne.

**27**- Ew Xweda ye yê ku ji nebûnê mirov çêkirine û paşê (roja qiyametê) dê wî vejîne, ev vejandin jê re ji ya ewil hêsantir e. Li erd û asîmanan pesnên herî bilind ên Xwedê ne. Her Ew e yê desthilat, ê xweyhîkmet.

**28**- Xwedê ji bo we derb û meseleyekê ji we tîne; ma kî ji we razî dibe ku koleyê we bibe hevpişkê we di malê we de; ew malê ku me daye we. Vêca ku hûn û ew tê de wekhev bin, hûn ji wan bitirsin ka çawa hûn ji hevpişkên xwe yê azad ditirsin. Her wisa ji bo miletekî ku têdigihîjin em ayetên xwe berfireh aşkera dikin.

Ev ayeta pîroz dide zanîn; mirovê azad, mirovê ku ji cinsê wî ye, lêbelê ev ne azad e, belkî kole ye, nake hevparê milk û serweta xwe ya di çend rojên dinyayê de. Êdî ew çawa pûtên ku mexlûqên Xwedê ne dikin şerîkên Xwedê! Halev e ku ew bêhevta ye, bêheval e, bêzewal e.

**29**- Nexêr, belkî ew ên ku (bi pûtperestiyê) zalim bûne, bêzanîn dane pey arezûyên xwe. Vêca ew kesê ku Xwedê wî ji rê bixe ew kî ye wî rasterê bike? Ji bo wan tu arîkar jî tune ne.

**30**- Tu berê xwe rast û durist, bêfetil û vîç bide dînê tewhîdê; xwe bi fitreta ji cem Xwedê bigire, ew fitreta ku Xwedê însan li serê çêkiriye (ku ew dînê tewhîdê ye). Ji afirandina Xwedê re guhartin tune ye. Ha ev e dînê rast û durist, lê belê pirên mirovan nizanin.

**31**- Hûn tev li Xwedayê xwe vegerin, helal û heramê wî biparêzin, bi awayê pêdivî nimêj bikin û nebin ji muşrikan...

**32**- Nebin ji wan ên ku dînê xwe ji hev parçe kirin û bûne bend û civat. Her hevbendiyek bi ya li cem xwe dilşad dibe.

وَاِذَا مَسَّ النَّاسَ ضُرٌّ دَعَوْا رَبَّهُمْ مُنٖيبٖينَ اِلَيْهِ ثُمَّ اِذَٓا اَذَاقَهُمْ
مِنْهُ رَحْمَةً اِذَا فَرٖيقٌ مِنْهُمْ بِرَبِّهِمْ يُشْرِكُونَ ﴿٣٣﴾ لِيَكْفُرُوا
بِمَٓا اٰتَيْنَاهُمْ فَتَمَتَّعُوا فَسَوْفَ تَعْلَمُونَ ﴿٣٤﴾ اَمْ اَنْزَلْنَا عَلَيْهِمْ
سُلْطَانًا فَهُوَ يَتَكَلَّمُ بِمَا كَانُوا بِهٖ يُشْرِكُونَ ﴿٣٥﴾ وَاِذَٓا اَذَقْنَا
النَّاسَ رَحْمَةً فَرِحُوا بِهَا وَاِنْ تُصِبْهُمْ سَيِّئَةٌ بِمَا قَدَّمَتْ اَيْدٖيهِمْ
اِذَا هُمْ يَقْنَطُونَ ﴿٣٦﴾ اَوَلَمْ يَرَوْا اَنَّ اللّٰهَ يَبْسُطُ الرِّزْقَ لِمَنْ يَشَٓاءُ
وَيَقْدِرُ اِنَّ فٖي ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِقَوْمٍ يُؤْمِنُونَ ﴿٣٧﴾ فَاٰتِ ذَا الْقُرْبٰى
حَقَّهُ وَالْمِسْكٖينَ وَابْنَ السَّبٖيلِ ذٰلِكَ خَيْرٌ لِلَّذٖينَ يُرٖيدُونَ
وَجْهَ اللّٰهِ وَاُولٰٓئِكَ هُمُ الْمُفْلِحُونَ ﴿٣٨﴾ وَمَٓا اٰتَيْتُمْ مِنْ رِبًا لِيَرْبُوَا
فٖٓي اَمْوَالِ النَّاسِ فَلَا يَرْبُوا عِنْدَ اللّٰهِ وَمَٓا اٰتَيْتُمْ مِنْ زَكٰوةٍ
تُرٖيدُونَ وَجْهَ اللّٰهِ فَاُولٰٓئِكَ هُمُ الْمُضْعِفُونَ ﴿٣٩﴾ اَللّٰهُ الَّذٖي
خَلَقَكُمْ ثُمَّ رَزَقَكُمْ ثُمَّ يُمٖيتُكُمْ ثُمَّ يُحْيٖيكُمْ هَلْ
مِنْ شُرَكَٓائِكُمْ مَنْ يَفْعَلُ مِنْ ذٰلِكُمْ مِنْ شَيْءٍ سُبْحَانَهُ وَتَعَالٰى
عَمَّا يُشْرِكُونَ ﴿٤٠﴾ ظَهَرَ الْفَسَادُ فِي الْبَرِّ وَالْبَحْرِ بِمَا كَسَبَتْ
اَيْدِي النَّاسِ لِيُذٖيقَهُمْ بَعْضَ الَّذٖي عَمِلُوا لَعَلَّهُمْ يَرْجِعُونَ ﴿٤١﴾

**33**- Dema tengezariyek bi ser mirovan de were, li Xwedayê xwe vedigerin û lavelavê jê dikin. Piştre dema ku Xwedê Teala ji cem xwe rehmetekê /nîmetekî bi wan bide tehmkirin, tu dinêrî ku desteyekê ji wan ji Xwedayê xwe re şerîkan çêdikin.

**34**- De bila ew di biwara nîmetên ku me dane wan de nankoriyê bikin û vêca bila xweş bijîn, ew ê bizanin (ka çi dê bê serê wan).

**35**- Yan jî ma Me delîlek ji wan re aniye xwarê, ku ew delîl ji wan re, ji ya ku ew ji Xwedê re dikine şerîk xeber dide?!

**36**- Dema ku em rehmetekê bi mirovan bidin çêjkirin, bi wê kêfê çavsoriyê dikin. Eger bi sedema ya ku destên wan kiriye belayek were serê wan, di cih de ew bêhêvî dibin.

**37**- Ma ew bi xwe nabînin ku Xwedê kê bivê rizqê wî fireh dike, kê jî bivêt rizqê wî teng dike. Bi rastî di vê de ji bo civateke ku bawer bikin, ders û îbret hene.

**38**- Nexwe tu mafê xizman û rêwiyê (ku di rê de maye) bide. Ji bo yên ku li rizaya Xwedê bigerin, ev ya herî rind e. Ha ew in ên ku (li dinya û axiretê) serfiraz bibin.

**39**- Ew malê ku we daye xelkê, da ku ji malê wan malê we zêde bibe, vêca ew li cem Xwedê Teala hîç zêde nabe. Ew a ku we bi zekat daye ku hûn bi wê rizaya Xwedê Teala divên, vêca ha ew in ên ku xêra wan qat bi qat zêde dibe.

**40**- Xwedê ye yê ku hûn afirandine, piştre rizqê we daye, piştre Ew ê we bimirîne, piştre ew ê we vejîne. Erê ma ji nav hevpişkên we (ew ên ku hûn perestina wan dikin) yekî ku bikaribe tiştekî ji van bike heye? Xwedê ji ya ku hûn dikine şerîk, pak û bilind e.

**41**- Ji ber gunehên ku mirovan bi destên xwe kirin, xerabî (nexweşî û tengasî) li bej û behrê xuya bûye, da ku Xwedê (bi vê yeke cezayê) hinekî ji ya ku kirin bi wan bide tehmkirin. Hêvî heye ku ew (ji gunehên xwe) vegerin (û tobe bikin).

قُلْ سِيرُوا فِى الْاَرْضِ فَانْظُرُوا كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ الَّذِينَ مِنْ قَبْلُ
كَانَ اَكْثَرُهُمْ مُشْرِكِينَ ﴿٤٢﴾ فَاَقِمْ وَجْهَكَ لِلدِّينِ الْقَيِّمِ مِنْ قَبْلِ
اَنْ يَاْتِىَ يَوْمٌ لَا مَرَدَّ لَهُ مِنَ اللّٰهِ يَوْمَئِذٍ يَصَّدَّعُونَ ﴿٤٣﴾ مَنْ كَفَرَ
فَعَلَيْهِ كُفْرُهُ وَمَنْ عَمِلَ صَالِحًا فَلِاَنْفُسِهِمْ يَمْهَدُونَ ﴿٤٤﴾ لِيَجْزِىَ
الَّذِينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ مِنْ فَضْلِهِ اِنَّهُ لَا يُحِبُّ الْكَافِرِينَ
﴿٤٥﴾ وَمِنْ اٰيَاتِهِ اَنْ يُرْسِلَ الرِّيَاحَ مُبَشِّرَاتٍ وَلِيُذِيقَكُمْ مِنْ
رَحْمَتِهِ وَلِتَجْرِىَ الْفُلْكُ بِاَمْرِهِ وَلِتَبْتَغُوا مِنْ فَضْلِهِ وَلَعَلَّكُمْ
تَشْكُرُونَ ﴿٤٦﴾ وَلَقَدْ اَرْسَلْنَا مِنْ قَبْلِكَ رُسُلًا اِلٰى قَوْمِهِمْ فَجَاؤُهُمْ
بِالْبَيِّنَاتِ فَانْتَقَمْنَا مِنَ الَّذِينَ اَجْرَمُوا وَكَانَ حَقًّا عَلَيْنَا نَصْرُ
الْمُؤْمِنِينَ ﴿٤٧﴾ اَللّٰهُ الَّذِى يُرْسِلُ الرِّيَاحَ فَتُثِيرُ سَحَابًا فَيَبْسُطُهُ
فِى السَّمَاءِ كَيْفَ يَشَاءُ وَيَجْعَلُهُ كِسَفًا فَتَرَى الْوَدْقَ يَخْرُجُ
مِنْ خِلَالِهِ فَاِذَا اَصَابَ بِهِ مَنْ يَشَاءُ مِنْ عِبَادِهِ اِذَا هُمْ يَسْتَبْشِرُونَ
﴿٤٨﴾ وَاِنْ كَانُوا مِنْ قَبْلِ اَنْ يُنَزَّلَ عَلَيْهِمْ مِنْ قَبْلِهِ لَمُبْلِسِينَ
﴿٤٩﴾ فَانْظُرْ اِلٰى اٰثَارِ رَحْمَتِ اللّٰهِ كَيْفَ يُحْيِ الْاَرْضَ بَعْدَ
مَوْتِهَا اِنَّ ذٰلِكَ لَمُحْيِ الْمَوْتٰى وَهُوَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ ﴿٥٠﴾

وَلَئِنْ

**42**- (Resulê min!) Bibêje: Li ser rûyê erdê bigerin, vêca binêrin ka domahîka wan miletên berê ku pirên wan muşrik bûn, çawa bû?!

**43**- Berê xwe bide dînê rast û durist, beriya rojeke welê were ku li cem Xwedê Teala jê re veger tune ye! Wê rojê (mirov) kom bi kom dê ji hev biqetin.

**44**- Kî kafir bibe webalê kafiriya wî jê re ye, kî jî kar û barên qenc bike ew (li bihiştê) cihê xwe bes ji xwe re amade dike.

**45**- (Ew ji hev diqetin) da ku Xwedê wan ên ku bawerî anî û karên qenc kirin ji qenciya xwe xelat bike. Bêguman Xwedê hez ji kafiran nake.

**46**- (Gelî mirovan!) Ji nîşanên (qudreta Xwedê Teala) ye ku bayê wek mizgînber dişîne, da ku hinekî ji dilovaniya xwe bi we bide tehmkirin, da ku keştî bi fermana wî bigerin, avjeniyê bikin, ji bo hûn ji kerema wî li rizqê xwe bigerin û da ku hûn wî bişêkirînin.

**47**- (Resûlê min!) Sond be ku me beriya te jî gelek pêxember ji gelên wan re şandin, vêca ew bi mucîze û belge ji gelê xwe re hatin. Îcar Me ew ên ku guneh kirine tol li wan vekir û li ser Me misoger bûye ku Em bawermendan bi ser bixin.

**48**- Xwedê Teala ye, Ew ê ku bayê dişîne, vêca ew ba ewran radike û dilivîne. Ew çawa bivê wisa li asîmanan belav dike, wan parçe parçe digerîne; êdî tu dibînî ku wa ye baran ji nava wan dibare. Vêca dema Xwedê ji bendeyên xwe kê bivêt baranê li wî bibarîne, di cih de (ew, bi rehma Xwedê) kêfxweş dibin.

**49**- Çendî ew beriya ku Xwedê baranê li ser wan bibarîne (ji hatina wê) bêhêvî jî bûbûn.

**50**- Vêca de li berhemên barana ku Xwedê barandiye binêre; piştî mirina (hişkbûna) wê ka çawa vedijîne? Bêguman ewê ku erdê sax dike, ew teqez yê mirî jî sax dike. Bêguman ew li ser her tiştî qadir e.

وَلَئِنْ اَرْسَلْنَا رِيحًا فَرَاَوْهُ مُصْفَرًّا لَظَلُّوا مِنْ بَعْدِهِ يَكْفُرُونَ
﴿٥١﴾ فَاِنَّكَ لَا تُسْمِعُ الْمَوْتٰى وَلَا تُسْمِعُ الصُّمَّ الدُّعَاءَ اِذَا وَلَّوْا
مُدْبِرِينَ ﴿٥٢﴾ وَمَا اَنْتَ بِهَادِ الْعُمْيِ عَنْ ضَلَالَتِهِمْ اِنْ تُسْمِعُ
اِلَّا مَنْ يُؤْمِنُ بِاٰيَاتِنَا فَهُمْ مُسْلِمُونَ ﴿٥٣﴾ اَللّٰهُ الَّذِى خَلَقَكُمْ
مِنْ ضَعْفٍ ثُمَّ جَعَلَ مِنْ بَعْدِ ضَعْفٍ قُوَّةً ثُمَّ جَعَلَ مِنْ بَعْدِ
قُوَّةٍ ضَعْفًا وَشَيْبَةً يَخْلُقُ مَا يَشَاءُ وَهُوَ الْعَلِيمُ الْقَدِيرُ ﴿٥٤﴾
وَيَوْمَ تَقُومُ السَّاعَةُ يُقْسِمُ الْمُجْرِمُونَ مَا لَبِثُوا غَيْرَ سَاعَةٍ
كَذٰلِكَ كَانُوا يُؤْفَكُونَ ﴿٥٥﴾ وَقَالَ الَّذِينَ اُوتُوا الْعِلْمَ
وَالْاِيمَانَ لَقَدْ لَبِثْتُمْ فِى كِتَابِ اللّٰهِ اِلٰى يَوْمِ الْبَعْثِ فَهٰذَا
يَوْمُ الْبَعْثِ وَلٰكِنَّكُمْ كُنْتُمْ لَا تَعْلَمُونَ ﴿٥٦﴾ فَيَوْمَئِذٍ
لَا يَنْفَعُ الَّذِينَ ظَلَمُوا مَعْذِرَتُهُمْ وَلَا هُمْ يُسْتَعْتَبُونَ ﴿٥٧﴾
وَلَقَدْ ضَرَبْنَا لِلنَّاسِ فِى هٰذَا الْقُرْاٰنِ مِنْ كُلِّ مَثَلٍ وَلَئِنْ
جِئْتَهُمْ بِاٰيَةٍ لَيَقُولَنَّ الَّذِينَ كَفَرُوا اِنْ اَنْتُمْ اِلَّا مُبْطِلُونَ
﴿٥٨﴾ كَذٰلِكَ يَطْبَعُ اللّٰهُ عَلٰى قُلُوبِ الَّذِينَ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٥٩﴾
فَاصْبِرْ اِنَّ وَعْدَ اللّٰهِ حَقٌّ وَلَا يَسْتَخِفَّنَّكَ الَّذِينَ لَا يُوقِنُونَ ﴿٦٠﴾

**51**- Sond be, eger ku em bayekî (bi ser çandiniya wan de) bişînin û ew jî çandiniya xwe zerbûyî bibînin, piştî wê zerbûnê teqez dê nankoriyê bikin.

**52**- (Resûlê min!) Bêguman tu nikarî gotina xwe bi dilmiriyan bidî bihîstin û tu doza xwe nikarî bi yên ker bidî bihîstin dema pişta xwe bidin te û ji te birevin.

**53**- Tu nikarî dilkoran jî ji rêşaşiya wan vegerênî ser riya rast. Bes tu dikarî (doza xwe) bigihînî wan ên ku bawerî bi ayetên me tînin, vêca ew ji fermana me re berdest in.

**54**- Xwedê Teala ye, Ew ê ku ji pêşî ve hûn lewaz afirandine, piştî lewaziyê hûn bi hêz û xurt kirine, piştî xurtiyê hûn lawaz û kal kirin. Xwedê çi bivê wê dixuliqîne û ew her ê zana, her ê kara ye.

**55**- Roja ku qiyamet radibe, guneh-kar sond dixwin ku ew ji demeke pir kin pê ve (li dinyayê) nemane. Ha wan (li dinyayê) wisa berê xwe (ji heqiyê) vedigerandin.

**56**- Ew ên ku zanîn û îman ji wan re hatiye dayîn (ji wan munkiran re) dibêjin: Sond be ku hûn di nivîsa Xwedê de (her wekî hukim hatî dayîn) heyanî roja qiyametê hûn mane. Vêca ha ev roja qiyametê ye, lê belê we ji (hatina) wê bawer nedikir.

**57**- Êdî wê rojê lêborînxwestina wan ên ku zalim in tu karê nade wan û ji wan nayê xwestin ku ew Xwedê jî ji xwe razî bikin.

**58**- Sond be ku me di vê Quranê de ji bo mirovan her texlît mînak aşkera kirine. (Resûlê min!) Bi sond! Eger tu ji wan re mucîzeyekê jî bînî teqez ew ên kafir bûne dê bibêjin: Hûn tenê pûçiyê ji bo me tînin.

**59**- Bi vî awayî Xwedê Teala morê li ser dilên wan dixe, ew ên ku tewhîdê nizanin.

**60**- Vêca tu sebrê bikêşe. Bizane ku peymana Xwedê heq e. Zinhar bila ew ên ku (bi qiyametê) ji dil bawerî nayînin te nedin bipaşvexistin!



## SÛREYÊ LUQMAN

Sûreyê Luqman, 34 (sih û çar) ayet e. Ji ayetên 27'em, 28'em û 29'em pê ve tev li Mekkê daketine. Ji ber ku tê de qiseya Luqmanê Hekîm hatiye ragihandin, jê re Sûreyê Luqman hatiye gotin.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

1- Elîf, Lam, Mîm.

2- Ha ev, ayetên kitêba xwedanhîkmet e.

3- Ew rêber û rehmet e ji bo mirovên qencîkar.

4- Ew qencîkarên ku bi awayê pêdivî nimêj dikin, zekata malê xwe didin û ji qinyata dilê xwe bi axretê bawerî tînin.

5- Ha ew ji cem Xwedayê xwe li ser hîdayetekê ne û ew in ên ku (li dinyayê û axiretê) serfiraz û rizgar bûne.

6- Hin ji însanan hene ku gotina kelevajî û pûç dikirin da ku bêzanîn mirovan ji riya Xwedê derxin û wê ji xwe re bikin tinazok. Ha ew, her ezabê riswaker ji wan re ye.

7- Dema ku ayetên me jê re tên xwendin, ji pozbilindiya xwe pişt dide wan, her wekî ku wî ew ne bihîstibin û her wekî ku di guhên wî de kerîtî hebe. Vêca tu mizgîniya ezabekî cansoj bidê!

8- Bêguman ew ên ku bawerî anîn û karên qenc kirine, ji wan re bihiştên xwedînîmet hene.

9- Ew her û her tê de mayînde ne, ev soza Xwedê ye ku tê de guman tune ye û her Ew e, yê ezîz, yê hekîm.

10- Xweda ev asîmanê ku hûn dibînin, bê stûn afirandiye. Çiyayên asê û mikûm tê de danîne da ku we nehejîne û tê de her texlît heywan afirandine û ji hev zêde kirine. Me ji ewran avek barandiye, vêca em tê de her texlît giyayên bifeyde hêşîn dikin.

11- Ha ev tev mexlûqên Xwedê ne. Vêca de ka nîşanî min bidin ew ên ku ji bilî Xwedê we ew dihebandin ka çi afirandine? Ne tiştek jî, belkî yên sitemkar her di rêşaşiyeke aşkera de ne.

وَلَقَدْ اٰتَيْنَا لُقْمٰنَ الْحِكْمَةَ اَنِ اشْكُرْ لِلّٰهِ وَمَنْ يَشْكُرْ
فَاِنَّمَا يَشْكُرُ لِنَفْسِه۪ وَمَنْ كَفَرَ فَاِنَّ اللّٰهَ غَنِيٌّ حَم۪يدٌ ﴿١٢﴾ وَاِذْ قَالَ
لُقْمٰنُ لِابْنِه۪ وَهُوَ يَعِظُهُ يَا بُنَيَّ لَا تُشْرِكْ بِاللّٰهِ اِنَّ الشِّرْكَ
لَظُلْمٌ عَظ۪يمٌ ﴿١٣﴾ وَوَصَّيْنَا الْاِنْسَانَ بِوَالِدَيْهِ حَمَلَتْهُ اُمُّهُ وَهْنًا
عَلٰى وَهْنٍ وَفِصَالُهُ ف۪ي عَامَيْنِ اَنِ اشْكُرْ ل۪ي وَلِوَالِدَيْكَ اِلَيَّ
الْمَص۪يرُ ﴿١٤﴾ وَاِنْ جَاهَدَاكَ عَلٰى اَنْ تُشْرِكَ ب۪ي مَا لَيْسَ لَكَ بِه۪
عِلْمٌ فَلَا تُطِعْهُمَا وَصَاحِبْهُمَا فِي الدُّنْيَا مَعْرُوفًا وَاتَّبِعْ سَب۪يلَ
مَنْ اَنَابَ اِلَيَّ ثُمَّ اِلَيَّ مَرْجِعُكُمْ فَاُنَبِّئُكُمْ بِمَا كُنْتُمْ
تَعْمَلُونَ ﴿١٥﴾ يَا بُنَيَّ اِنَّهَا اِنْ تَكُ مِثْقَالَ حَبَّةٍ مِنْ خَرْدَلٍ فَتَكُنْ
ف۪ي صَخْرَةٍ اَوْ فِي السَّمٰوَاتِ اَوْ فِي الْاَرْضِ يَأْتِ بِهَا اللّٰهُ
اِنَّ اللّٰهَ لَط۪يفٌ خَب۪يرٌ ﴿١٦﴾ يَا بُنَيَّ اَقِمِ الصَّلٰوةَ وَأْمُرْ بِالْمَعْرُوفِ
وَانْهَ عَنِ الْمُنْكَرِ وَاصْبِرْ عَلٰى مَا اَصَابَكَ اِنَّ ذٰلِكَ مِنْ عَزْمِ
الْاُمُورِ ﴿١٧﴾ وَلَا تُصَعِّرْ خَدَّكَ لِلنَّاسِ وَلَا تَمْشِ فِي الْاَرْضِ مَرَحًا
اِنَّ اللّٰهَ لَا يُحِبُّ كُلَّ مُخْتَالٍ فَخُورٍ ﴿١٨﴾ وَاقْصِدْ ف۪ي مَشْيِكَ
وَاغْضُضْ مِنْ صَوْتِكَ اِنَّ اَنْكَرَ الْاَصْوَاتِ لَصَوْتُ الْحَم۪يرِ ﴿١٩﴾

**12**- Sond be, me hîkmet daye Luqman û me jê re got: Şêkiriya Xwedayê xwe bike. Kî şêkiriya Xwedê bike ew ji bo xwe dike (lewra xêra şêkiriya wî jê re ye). Kî nankoriyê jî bike bila bizane ku Xwedê Teala dewlemend û pesnande ye.

**13**- Wê demê Luqman şîret li kurê xwe kir û jê re wiha got: Kurê mino! Ji Xwedê Teala re şerîkan çêneke! Bêguman şerîkçêkirin her zilmeke mezin e.

**14**- Me ferman li mirovan kir ku ew qenciyê li dê û bavên xwe bikin -dayîka wî bi zor û zehmetî ew hilgirtiye û di du salan de ji şîr vekiriye- û şêkiriya min û şêkiriya dê û bavên xwe bikin. Veger, tenê bi bal min ve ye.

**15**- Eger dê û bav, bi te re têbikoşin da ku ya tu pê nizanî ji min re bikî şerîk, wê çaxê bi gotina wan meke! (Lê belê dîsa jî) li dinyayê bi wan re xweş derbas bike û bide dûv riya kesê ku bi bal min ve tobe kiriye. Paşê vegera we bes bi bal min ve ye. Wê çaxê ya ku we dikir ez ê we pê agahdar bikim.

**16**- (Luqman şîretên xwe wiha berdewam kirin:) Kurê mino! Ew tiştê ku tu bikî (çi xêr be çi jî guneh) çendî bi qasî giraniya libeke xerdelê be û di nava zinarekî de be jî, yan li asîmanan be yan jî li erdê be, dîsa Xwedê Teala dê wê bîne (pêşberî te û hesabê wê ji te bipirse). Bêguman Xwedê, lutufkar e, agahdar e.

**17**- Kurê mino! Bi awayê pêdivî nimêj bike, bi qencîkirinê ferman bike, ji neqenciyê bide paş û li hemberî (bela)ya ku (bi sedema van) were serê te, xwe ragire. Bêguman kirina van şol û karan lazim û pêdivî ye.

**18**- Ji çavsorî berê xwe ji mirovan venegerîne û bi queretî li ser erdê nemeşe. Bêguman Xwedê Teala, ji tu qureyê xwemezindêr hez nake.

**19**- Di rêveçûna xwe de asayî be. Dengê xwe nizm bike. Bêguman dengê herî kirêt dengê/zirîna kerê ye.

أَلَمْ تَرَوْا أَنَّ اللّٰهَ سَخَّرَ لَكُمْ مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَمَا فِي الْأَرْضِ
وَأَسْبَغَ عَلَيْكُمْ نِعَمَهُ ظَاهِرَةً وَبَاطِنَةً وَمِنَ النَّاسِ مَنْ يُجَادِلُ
فِي اللّٰهِ بِغَيْرِ عِلْمٍ وَلَا هُدًى وَلَا كِتَابٍ مُنِيرٍ ﴿٢٠﴾ وَإِذَا قِيلَ لَهُمُ
اتَّبِعُوا مَا أَنْزَلَ اللّٰهُ قَالُوا بَلْ نَتَّبِعُ مَا وَجَدْنَا عَلَيْهِ آبَاءَنَا أَوَلَوْ
كَانَ الشَّيْطَانُ يَدْعُوهُمْ إِلَى عَذَابِ السَّعِيرِ ﴿٢١﴾ وَمَنْ يُسْلِمْ
وَجْهَهُ إِلَى اللّٰهِ وَهُوَ مُحْسِنٌ فَقَدِ اسْتَمْسَكَ بِالْعُرْوَةِ الْوُثْقَى
وَإِلَى اللّٰهِ عَاقِبَةُ الْأُمُورِ ﴿٢٢﴾ وَمَنْ كَفَرَ فَلَا يَحْزُنْكَ كُفْرُهُ
إِلَيْنَا مَرْجِعُهُمْ فَنُنَبِّئُهُمْ بِمَا عَمِلُوا إِنَّ اللّٰهَ عَلِيمٌ بِذَاتِ
الصُّدُورِ ﴿٢٣﴾ نُمَتِّعُهُمْ قَلِيلًا ثُمَّ نَضْطَرُّهُمْ إِلَى عَذَابٍ غَلِيظٍ
﴿٢٤﴾ وَلَئِنْ سَأَلْتَهُمْ مَنْ خَلَقَ السَّمٰوَاتِ وَالْأَرْضَ لَيَقُولُنَّ اللّٰهُ قُلِ
الْحَمْدُ لِلّٰهِ بَلْ أَكْثَرُهُمْ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٢٥﴾ لِلّٰهِ مَا فِي السَّمٰوَاتِ
وَالْأَرْضِ إِنَّ اللّٰهَ هُوَ الْغَنِيُّ الْحَمِيدُ ﴿٢٦﴾ وَلَوْ أَنَّ مَا فِي الْأَرْضِ
مِنْ شَجَرَةٍ أَقْلَامٌ وَالْبَحْرُ يَمُدُّهُ مِنْ بَعْدِهِ سَبْعَةُ أَبْحُرٍ
مَا نَفِدَتْ كَلِمَاتُ اللّٰهِ إِنَّ اللّٰهَ عَزِيزٌ حَكِيمٌ ﴿٢٧﴾ مَا خَلْقُكُمْ
وَلَا بَعْثُكُمْ إِلَّا كَنَفْسٍ وَاحِدَةٍ إِنَّ اللّٰهَ سَمِيعٌ بَصِيرٌ ﴿٢٨﴾



**20**- (Gelî mirovan!) Ma hûn nabînin ku Xwedê tiştên li erdê û tiştên li asîmanan hene ji bo we misixur kirine û nîmetên xwe yên xuyayî û nexuyayî li ser we reşandine. Ji mirovan hin hene ku bê zanîn, bêrêber û bê belgeyeke ronker der barê Xwedê Teala de xirecir û zimandirêjiyê dikin.

**21**- Dema ji wan re bê gotin: Bidin pey wehya ku Xwedê ew hinartiye, dibêjin: Nexêr, belkî em ê bidin pey a ku me bavanên xwe li serê dîtiye. Erê ma ku şeytan wan gazî bal agirê bi pêt ve jî bike (ew ê bidin pey wî)?

**22**- Kî ku xwe bisipêre Xwedê Teala û ew rast û durist be, vêca bi rastî wî xwe bi qulpa saxlem girtiye û encama kar û baran her bi bal Xwedê ve ye.

**23**- Kî ku kafir bibe, bila kafiriya wî te xemgîn meke (ey Muhemmed)! Vegera wan tenê bi bal me ve ye. Em ê ya ku wan kiriye ji wan re bibêjin. Bêguman Xwedê bi ya dilan de dizane.

**24**- Em (li vê dinyayê) hindikî wan diçêjînin, piştre em ê wan biajone ber bi ezabekî giran û dijwar ve.

**25**- Sond be, eger tu ji wan bipirsî kê erd û asîman afirandine? Teqez dê bibêjin, Xwedê Teala. Bibêje: Hemd ji Xwedê re be (ku we ev bi devê xwe got). Lê belê pirên wan der barê Xwedê de nezan in.

**26**- Her tiştên ku li erd û asîmanan hene ew tev yên Xwedê ne. Bêguman Xwedê her ew e yê dewlemend, yê hêjayê pesindayînê.

**27**- Eger bi rastî çiqas darên li erdê hene pênûs (qelem) bin, derya û bi qasî wê heft deryayên din jî hibra wan bin, (vêca gotinên Xwedê bi wan binivîsin) gotinên Xwedê dê xelas nebin. Bêguman Xwedê ezîz e, hekîm e.

**28**- (Gelî mirovan!) Afirandina we û saxkirina we tevekan li cem Xwedê wekî afirandin û saxkirina yek mirovekî ye. Bêguman Xwedê bihîzer e, bîner e.

**29**- Ma tu nizanî ku Xwedê şevê dixe ser rojê (rojê dirêj dike) û rojê jî dixe ser şevê (şeve dirêj dike), roj û heyv ji fermaña xwe re stûxwar kirine û ev tev heya demeke navlêkirî li dor hev digerin. Xwedê ji ya ku hûn dikin, agahdar e.

**30**- Ev rewşa bi hişmet, da ku hûn bizanin û îqrar bikin ku Xwedê Teala her heq e û ew ên ku ji bilî Xwedê wan dihebînin her batil û pûç in. Bêguman Xwedê her ew e yê bilind, ê mezin.

**31**- Ma tu nabînî ku keştî bi kerema Xwedê Teala di behrê de dikişin da ku hinek ji nîşanên qudreta xwe nîşanî we bide. Bêguman di vê de, ji bo her kesê zêde xweragir û spasdar, ders û nîşan hene.

**32**- Dema pêlên behrê yên mîna çiyan li wan hatin hev, hemen ji dilekî xalis li ber Xwedê digerin. Gava ku Xwedê ew deranîne bejê û rizgar kirin, vêca hin ji wan kêm dişêkirênin


٤١٥ الجزء الحادي والعشرون

اَلَمْ تَرَ اَنَّ اللّٰهَ يُولِجُ الَّيْلَ فِى النَّهَارِ وَيُولِجُ النَّهَارَ فِى الَّيْلِ
وَسَخَّرَ الشَّمْسَ وَالْقَمَرَ كُلٌّ يَجْرٖى اِلٰٓى اَجَلٍ مُسَمًّى وَاَنَّ اللّٰهَ
بِمَا تَعْمَلُونَ خَبٖيرٌ ﴿٢٩﴾ ذٰلِكَ بِاَنَّ اللّٰهَ هُوَ الْحَقُّ وَاَنَّ مَا يَدْعُونَ
مِنْ دُونِهِ الْبَاطِلُ وَاَنَّ اللّٰهَ هُوَ الْعَلِىُّ الْكَبٖيرُ ﴿٣٠﴾ اَلَمْ تَرَ اَنَّ
الْفُلْكَ تَجْرٖى فِى الْبَحْرِ بِنِعْمَتِ اللّٰهِ لِيُرِيَكُمْ مِنْ اٰيَاتِهٖ اِنَّ فٖى
ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ لِكُلِّ صَبَّارٍ شَكُورٍ ﴿٣١﴾ وَاِذَا غَشِيَهُمْ مَوْجٌ كَالظُّلَلِ
دَعَوُا اللّٰهَ مُخْلِصٖينَ لَهُ الدّٖينَ فَلَمَّا نَجّٰيهُمْ اِلَى الْبَرِّ فَمِنْهُمْ مُقْتَصِدٌ
وَمَا يَجْحَدُ بِاٰيَاتِنَٓا اِلَّا كُلُّ خَتَّارٍ كَفُورٍ ﴿٣٢﴾ يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ اتَّقُوا
رَبَّكُمْ وَاخْشَوْا يَوْمًا لَا يَجْزٖى وَالِدٌ عَنْ وَلَدِهٖ وَلَا مَوْلُودٌ هُوَ
جَازٍ عَنْ وَالِدِهٖ شَيْـًٔا اِنَّ وَعْدَ اللّٰهِ حَقٌّ فَلَا تَغُرَّنَّكُمُ الْحَيٰوةُ الدُّنْيَا
وَلَا يَغُرَّنَّكُمْ بِاللّٰهِ الْغَرُورُ ﴿٣٣﴾ اِنَّ اللّٰهَ عِنْدَهُ عِلْمُ السَّاعَةِ وَيُنَزِّلُ
الْغَيْثَ وَيَعْلَمُ مَا فِى الْاَرْحَامِ وَمَا تَدْرٖى نَفْسٌ مَاذَا تَكْسِبُ
غَدًا وَمَا تَدْرٖى نَفْسٌ بِاَىِّ اَرْضٍ تَمُوتُ اِنَّ اللّٰهَ عَلٖيمٌ خَبٖيرٌ ﴿٣٤﴾

سُورَةُ السَّجْدَةِ مَكِّيَّةٌ
وَهِيَ ثَلٰثُونَ اٰيَةً

(û hin ji wan jî nankor in). Ji bilî yê xedarê nankor kes ayetên me mandel nake.

**33**- Gelî mirovan! Hay ji helal û heramên Xwedê hebin û ji rojeke wisa bitirsin ku tu bav ji ber zarokên xwe ve û tu zarok jî ji ber bavê xwe ve nayê cezakirin. Bêguman soza ku Xwedê Teala daye heq e. Zinhar bila jiyana cîhanê we nexapîne û bila pelîdê xapînok jî we (bi merhemeta Xwedê) nexapîne!

**34**- Bêguman dema rabûna qiyametê her Xwedê pê dizane, ew baranê dibarîne, yê ku di malzarokan de ye bes Ew pê dizane, qet tu kes nizane ka sibehê ew dê çi qezenc bike û tu kes nizane ew dê li kîjan erdê bimire. Bêguman Xwedê (bi her tiştî) zana û agahdar e.

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
الٓمٓ ﴿١﴾ تَنْز۪يلُ الْكِتَابِ لَا رَيْبَ ف۪يهِ مِنْ رَبِّ الْعَالَم۪ينَ ﴿٢﴾
اَمْ يَقُولُونَ افْتَرٰيهُ بَلْ هُوَ الْحَقُّ مِنْ رَبِّكَ لِتُنْذِرَ قَوْمًا مَٓا
اَتٰيهُمْ مِنْ نَذ۪يرٍ مِنْ قَبْلِكَ لَعَلَّهُمْ يَهْتَدُونَ ﴿٣﴾ اَللّٰهُ الَّذ۪ي خَلَقَ
السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ وَمَا بَيْنَهُمَا ف۪ي سِتَّةِ اَيَّامٍ ثُمَّ اسْتَوٰى عَلَى
الْعَرْشِ مَا لَكُمْ مِنْ دُونِه۪ مِنْ وَلِيٍّ وَلَا شَف۪يعٍ اَفَلَا تَتَذَكَّرُونَ
﴿٤﴾ يُدَبِّرُ الْاَمْرَ مِنَ السَّمَٓاءِ اِلَى الْاَرْضِ ثُمَّ يَعْرُجُ اِلَيْهِ ف۪ي يَوْمٍ
كَانَ مِقْدَارُهُٓ اَلْفَ سَنَةٍ مِمَّا تَعُدُّونَ ﴿٥﴾ ذٰلِكَ عَالِمُ الْغَيْبِ
وَالشَّهَادَةِ الْعَز۪يزُ الرَّح۪يمُ ﴿٦﴾ اَلَّذ۪ٓي اَحْسَنَ كُلَّ شَيْءٍ خَلَقَهُ
وَبَدَاَ خَلْقَ الْاِنْسَانِ مِنْ ط۪ينٍ ﴿٧﴾ ثُمَّ جَعَلَ نَسْلَهُ مِنْ
سُلَالَةٍ مِنْ مَٓاءٍ مَه۪ينٍ ﴿٨﴾ ثُمَّ سَوّٰيهُ وَنَفَخَ ف۪يهِ مِنْ رُوحِه۪
وَجَعَلَ لَكُمُ السَّمْعَ وَالْاَبْصَارَ وَالْاَفْـِٔدَةَ قَل۪يلًا مَا تَشْكُرُونَ
﴿٩﴾ وَقَالُٓوا ءَاِذَا ضَلَلْنَا فِي الْاَرْضِ ءَاِنَّا لَف۪ي خَلْقٍ جَد۪يدٍ
بَلْ هُمْ بِلِقَٓاءِ رَبِّهِمْ كَافِرُونَ ﴿١٠﴾ قُلْ يَتَوَفّٰيكُمْ مَلَكُ
الْمَوْتِ الَّذ۪ي وُكِّلَ بِكُمْ ثُمَّ اِلٰى رَبِّكُمْ تُرْجَعُونَ ﴿١١﴾

وَلَوْ تَرٰٓى

## SÛREYÊ SECDE

Sûreyê Secde 30 (sih) ayet e. Li Mekkê daketiye. Navê wê ji ayeta 15'em tê ku tê de Xwedê Teala pesnê wan bawermendan dide ku dema ayetên Qurana Mezin dibihîzin, diçin sicûdê.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

**1- Elîf. Lam. Mîm.**

2- Hinartina Quranê hîç tê de guman tune ye ku ew ji cem Perwerdegarê alemê ye.

3- Belkî ew dibêjin Muhemmed Quran ji cem xwe lê aniye. Nexêr, belkî ew heq bi xwe ye, ji nik Rebbê te ye, ji bo ku tu pê miletekî wisa hişyar bikî ku beriya te tu hişyarker ji wan re nehatine. Da ku ew bêne ser riya rast.

4- Ew Xwedayê ku erd û asîmanan û yên ku di navbera wan de hene di şeş rojan de afirandine û ew ê ku li ser textê hukimraniyê rûniştiye (bi rûniştineke babetê xwe), ji wî pê ve ji bo we tu arîkar û mehdervan tune ne. Erê ma hê jî hûn aqil nagirin?

5- Xwedê ji esmên heyanî erdê hemû kar û barî ew bi rê ve dibe. Piştre (ev kar û bar) di rojekê de bi bal Xwedê ve bilind dibin ku ew roj bi qasî hezar salî ye, ji rojên ku hûn dijimêrin.

6- Ha ew (ê ku afirîner û rêvebirê hemî alemê ye), zanayê ya nependî û darîçav e, yê ku desthilatê dilovîn e.

7- Ew Xwedayê ku her tişt mikûm çêkiriye û di serê pêşîn de însan ji heriyê afirandiye.

8- Piştre zuriyeta însên ji dilopek ava lawaz afirandiye.

9- Piştre dirûv daye însên, ji rihê ku mexluqê wî ye pif kiriyê û ji we re guh, çav û dil çêkirine. Hûn çiqas Xwedayê xwe hindik dişêkirînin!

10- Ew dibêjin: Erê ma çaxê em di nav axê de winda bibin, erê em ê dîsa ji nû ve bêne xuliqandin? Nexêr, ne mîna wan e; belkî ew çûyîna hizûra Xwedayê xwe înkar dikin.

11- (Resûlê min! Ji wan re) Bibêje: Melekê mirinê yê ku bûye karsipareyê (standina) ruhê we dê we bimirîne, piştre hûn ê (sax bibin û) li Xwedayê xwe bêne vegerandin.

وَلَوْ تَرٰٓى اِذِ الْمُجْرِمُونَ نَاكِسُوا رُؤُ۫سِهِمْ عِنْدَ رَبِّهِمْۜ
رَبَّنَٓا اَبْصَرْنَا وَسَمِعْنَا فَارْجِعْنَا نَعْمَلْ صَالِحًا اِنَّا مُوقِنُونَ
﴿١٢﴾ وَلَوْ شِئْنَا لَاٰتَيْنَا كُلَّ نَفْسٍ هُدٰيهَا وَلٰكِنْ حَقَّ الْقَوْلُ
مِنّ۪ي لَاَمْلَئَنَّ جَهَنَّمَ مِنَ الْجِنَّةِ وَالنَّاسِ اَجْمَع۪ينَ ﴿١٣﴾ فَذُوقُوا
بِمَا نَس۪يتُمْ لِقَٓاءَ يَوْمِكُمْ هٰذَاۚ اِنَّا نَس۪ينَاكُمْ وَذُوقُوا عَذَابَ
الْخُلْدِ بِمَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿١٤﴾ اِنَّمَا يُؤْمِنُ بِاٰيَاتِنَا الَّذ۪ينَ اِذَا
ذُكِّرُوا بِهَا خَرُّوا سُجَّدًا وَسَبَّحُوا بِحَمْدِ رَبِّهِمْ وَهُمْ
لَا يَسْتَكْبِرُونَ ﴿١٥﴾ تَتَجَافٰى جُنُوبُهُمْ عَنِ الْمَضَاجِعِ يَدْعُونَ
رَبَّهُمْ خَوْفًا وَطَمَعًاۘ وَمِمَّا رَزَقْنَاهُمْ يُنْفِقُونَ ﴿١٦﴾ فَلَا تَعْلَمُ
نَفْسٌ مَٓا اُخْفِيَ لَهُمْ مِنْ قُرَّةِ اَعْيُنٍۚ جَزَٓاءً بِمَا كَانُوا يَعْمَلُونَ
﴿١٧﴾ اَفَمَنْ كَانَ مُؤْمِنًا كَمَنْ كَانَ فَاسِقًاۜ لَا يَسْتَوُ۫نَ ﴿١٨﴾
اَمَّا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ فَلَهُمْ جَنَّاتُ الْمَأْوٰى
نُزُلًا بِمَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿١٩﴾ وَاَمَّا الَّذ۪ينَ فَسَقُوا فَمَأْوٰيهُمُ
النَّارُۜ كُلَّمَٓا اَرَادُٓوا اَنْ يَخْرُجُوا مِنْهَٓا اُع۪يدُوا ف۪يهَا وَق۪يلَ
لَهُمْ ذُوقُوا عَذَابَ النَّارِ الَّذ۪ي كُنْتُمْ بِه۪ تُكَذِّبُونَ ﴿٢٠﴾

سجدة

12- Eger dema yên gunehkar ku li cem Xwedayê xwe sertewandî te bidîta (ku digotin) Xwedayê me! Me dît û me bihîst. Vêca me vegerîne (dinyayê) da ku em karên qenc bikin. Bêguman em ji dil bawerî tînin.

13- Eger me biviya me dê hîdayet bidaya her kesî. Lê belê ev gotin: "Sond be ku ez ê cehenemê ji tevekî (gunehkar û kafirên) cin û însa dagirim" heq û wacib bû.

14- (Dema ku kafir diçin dojehê dergevan ji wan re wiha dibêje:) Bi sedema ku hûn ji vê rojê xafil man (û we xwe noqî lezetên dinyayê kir) de vêca ezab biçêjin. Bêguman em ê jî we (di ezab de) ji bîr bikin. De heydê bi sedema kirinên xwe ezabê her û herî biçêjin!

15- Bêguman bes ew kes bawerî bi ayetên me tînin ew ên ku dema bi wan ayetan şîret li wan bêne kirin, xwe qure nakin; diçin sicûdê û digel pesn û şêkiriyê Xwedayê xwe ji her kêmasiyê pak didêrin.

Ev ayeta sicûda xwendinê ye. Di vê babetê de Pêxamber (s) wisa ferman kiriye: Gava zaroyekî Adem (ayeta) sicûdê bixwîne û here sicûdê, şeytan digirî, xwe jê dûr dike û dibêje: Hey wax li min! Fermana sicûdê li zaroyê Adem hat kirin, ew çû sicûdê, jê re bihişt heye û fermana sicûdê li min hat kirin, ez lê asê bûm, vêca dojeh ji min re ye.

16- Ew ên bawerdar teniştên wan ji nivînên wan dûr in. Bi tirs û bi hêvî li ber Xwedayê xwe digerin û ji rizqê ku me daye wan jî (di riya Xwedê de) xerc dikin.

17- Hîç tu kes nizane ka Xwedê ji bo bawerdaran, ji wan tiştên ku çav pê ronî dibin, bi sedema ya ku kirin, çi padaş hilandine.

18- Erê kesê ku bawerdar be, ma mîna kesê jirêderketî ye? Teqez ew ne mîna hev in.

19- Herçî ew ên ku bawerî anîn û karên qenc kirin, vêca ji wan re bihiştên lêmayînê hene.

20- Herçî ew ên ku ji rê derketine, cihê wan agir e. Çi dema ku ew bixwazin jê derkevin bi paş ve têne vegerandin. Ji wan re tê gotin: De heydê ezabê êgir ew ê ku we bawerî pê nedianî, biçêjin.

وَلَنُذِيقَنَّهُمْ مِنَ الْعَذَابِ الْاَدْنٰى دُونَ الْعَذَابِ الْاَكْبَرِ لَعَلَّهُمْ
يَرْجِعُونَ ﴿٢١﴾ وَمَنْ اَظْلَمُ مِمَّنْ ذُكِّرَ بِاٰيَاتِ رَبِّهٖ ثُمَّ اَعْرَضَ عَنْهَا
اِنَّا مِنَ الْمُجْرِمِينَ مُنْتَقِمُونَ ﴿٢٢﴾ وَلَقَدْ اٰتَيْنَا مُوسَى الْكِتَابَ
فَلَا تَكُنْ فٖى مِرْيَةٍ مِنْ لِقَائِهٖ وَجَعَلْنَاهُ هُدًى لِبَنٖى اِسْرَٓائٖيلَ
﴿٢٣﴾ وَجَعَلْنَا مِنْهُمْ اَئِمَّةً يَهْدُونَ بِاَمْرِنَا لَمَّا صَبَرُوا وَكَانُوا بِاٰيَاتِنَا
يُوقِنُونَ ﴿٢٤﴾ اِنَّ رَبَّكَ هُوَ يَفْصِلُ بَيْنَهُمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ فٖيمَا كَانُوا
فٖيهِ يَخْتَلِفُونَ ﴿٢٥﴾ اَوَلَمْ يَهْدِ لَهُمْ كَمْ اَهْلَكْنَا مِنْ قَبْلِهِمْ
مِنَ الْقُرُونِ يَمْشُونَ فٖى مَسَاكِنِهِمْ اِنَّ فٖى ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ
اَفَلَا يَسْمَعُونَ ﴿٢٦﴾ اَوَلَمْ يَرَوْا اَنَّا نَسُوقُ الْمَٓاءَ اِلَى الْاَرْضِ الْجُرُزِ
فَنُخْرِجُ بِهٖ زَرْعًا تَأْكُلُ مِنْهُ اَنْعَامُهُمْ وَاَنْفُسُهُمْ اَفَلَا
يُبْصِرُونَ ﴿٢٧﴾ وَيَقُولُونَ مَتٰى هٰذَا الْفَتْحُ اِنْ كُنْتُمْ صَادِقٖينَ
﴿٢٨﴾ قُلْ يَوْمَ الْفَتْحِ لَا يَنْفَعُ الَّذٖينَ كَفَرُوا اٖيمَانُهُمْ وَلَا هُمْ
يُنْظَرُونَ ﴿٢٩﴾ فَاَعْرِضْ عَنْهُمْ وَانْتَظِرْ اِنَّهُمْ مُنْتَظِرُونَ ﴿٣٠﴾

سُورَةُ الْاَحْزَابِ مَدَنِيَّةٌ
وَهِيَ ثَلٰثٌ وَسَبْعُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ

**21**- Sond be, beriya ezabê herî mezin ê axretê, em ê wan bi ezabê dinyayê bidin çêjandin da ku ew li xwe vegerin û bawerî bînin.

**22**- Ma ji wî kesê ku bi ayetên Xwedayê xwe bê hişyarkirin û paşê berê xwe ji wan vegerîne, zalimtir kî heye? Muheqeq em ê ji sûcdaran tolê vekin.

**23**- Sond be, Me Tewrat daye Mûsa û Me ew ji zarokên îsraîl re kiribû rênîşander, vêca (resûlê min) ji azara gihaştiyê nekeve gumanê ku ya hatiye serê te ku nehatibe serê wî.

**24**- Çi dema wan sebir kir û wan ji dil bi ayetên me bawerî anî, me ji nav wan gelek rêber derxistin ku bi emrê me (xelk) rasterê dikirin.

**25**- Bêguman Xwedayê te roja qiyametê der barê ya ku di heqê wan de ew bi hev ketibûn, dê di navbera wan de daraz/hukim bike.

**26**- Erê ma ji wan re eyan nebûye (û hê jî xafil in) ku beriya wan me gelek umet ji navê birine helakê, ku ew jî li şûnwarên wan digerin? Bêguman di van de gelek nîşan û delîl hene. Ma hê jî ew guhê xwe nadinê?

**27**- Erê ma ew nabînin ku em avê diajone ser erdehişka bêgiya, vêca em dexl û dan pê hêşîn dikin ku hem terş (deve, dewar û pez) ên wan hem jî ew bi xwe jê dixwin? Erê ma hê jî ew lê nafikirin (û ders û îbretê jê nagirin)?

**28**- Ew dibêjin: Eger bera hûn rast dibêjin, de ka ew serkeftina ku hûn behs dikin kengê ye?

**29**- Bibêje: Roja serkeftinê (roja qiyametê ye) ew roja ku baweriya kafiran tu feydê nade wan û ji wan re dê muhleta (tobekirinê) jî neyê dayîn!

**30**- Vêca tu wan bihêle û çav li rê be (ka dê çi were serê wan), bêguman ew jî (ji bo ya bê serê te) çavlirê ne.

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
يَٓا اَيُّهَا النَّبِيُّ اتَّقِ اللّٰهَ وَلَا تُطِعِ الْكَافِر۪ينَ وَالْمُنَافِق۪ينَۜ حزب
اِنَّ اللّٰهَ كَانَ عَل۪يمًا حَك۪يمًاۙ ١ وَاتَّبِعْ مَا يُوحٰٓى اِلَيْكَ
مِنْ رَبِّكَۜ اِنَّ اللّٰهَ كَانَ بِمَا تَعْمَلُونَ خَب۪يرًاۙ ٢ وَتَوَكَّلْ
عَلَى اللّٰهِۜ وَكَفٰى بِاللّٰهِ وَك۪يلًا ٣ مَا جَعَلَ اللّٰهُ لِرَجُلٍ
مِنْ قَلْبَيْنِ ف۪ي جَوْفِه۪ۚ وَمَا جَعَلَ اَزْوَاجَكُمُ الّٰٓـ۪ٔي تُظَاهِرُونَ
مِنْهُنَّ اُمَّهَاتِكُمْۚ وَمَا جَعَلَ اَدْعِيَٓاءَكُمْ اَبْنَٓاءَكُمْۜ ذٰلِكُمْ
قَوْلُكُمْ بِاَفْوَاهِكُمْۜ وَاللّٰهُ يَقُولُ الْحَقَّ وَهُوَ يَهْدِي السَّب۪يلَ
٤ اُدْعُوهُمْ لِاٰبَٓائِهِمْ هُوَ اَقْسَطُ عِنْدَ اللّٰهِۚ فَاِنْ لَمْ تَعْلَمُٓوا
اٰبَٓاءَهُمْ فَاِخْوَانُكُمْ فِي الدّ۪ينِ وَمَوَال۪يكُمْۜ وَلَيْسَ عَلَيْكُمْ
جُنَاحٌ ف۪يمَٓا اَخْطَاْتُمْ بِه۪ۙ وَلٰكِنْ مَا تَعَمَّدَتْ قُلُوبُكُمْۜ وَكَانَ
اللّٰهُ غَفُورًا رَح۪يمًا ٥ اَلنَّبِيُّ اَوْلٰى بِالْمُؤْمِن۪ينَ مِنْ اَنْفُسِهِمْ
وَاَزْوَاجُهُٓ اُمَّهَاتُهُمْۜ وَاُو۬لُوا الْاَرْحَامِ بَعْضُهُمْ اَوْلٰى بِبَعْضٍ ف۪ي
كِتَابِ اللّٰهِ مِنَ الْمُؤْمِن۪ينَ وَالْمُهَاجِر۪ينَ اِلَّٓا اَنْ تَفْعَلُٓوا اِلٰٓى
اَوْلِيَٓائِكُمْ مَعْرُوفًاۜ كَانَ ذٰلِكَ فِي الْكِتَابِ مَسْطُورًا ٦

## SÛREYÊ EHZAB

Sûreyê Ehzab 73 (heftê û sê) ayet e. Li Medînê daketiye. Sûre, navê xwe ji ayeta 20'em girtiye ku tê de peyva Ehzab derbas bûye û pirjimareya 'hizb' e ku ew jî bi maneya partî, civat, ajal û qafîle tê.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

1- Ey Pêxember! Tu hay (ji fermanên) Xwedê bimîne û bi gotina kafir û munafiqan meke. Bêguman Xwedê di kar û barê xwe de zana û xweyhîkmet e.

2- Bide pey wehya ku ji cem Xwedayê te ji te re hatiye. Bêguman Xwedê ji ya ku hûn dikin agahdar e.

3- Xwe bispêre Xwedê, ji karsparî ve Xweda teqez besî te ye.

4- Xwedê, du heb dil nexistine sînga tu zilaman, jinên we jî ew ên ku we zîhar bi wan re kiriye nexistine şûna dayîkên we û zirkurên we jî ji we re nekirine wekî kurên we yên ji we! Ev gotinên we ne ku hûn ji xwe re dibêjin. Xwedê rastiyê dibêje û ew riya rast aşkera dike.

Zîhar, ew e ku zilam ji pîreka xwe re bibêje: "Tu, ji min re wekî pişta diya min bî." Yanî çawa diya min ji min re heram e tu jî wisa ji min re heram bî. Li gorî adeteke ereban a beriya Îslamê gava zilamekî ev gotina ha ji pîreka xwe re bigota, ew pîrek dev jê dihat berdan, weke diya wî dihat dîtin û wî nikarîbû nêzîkî wê bibe. Ha ji vê re digotin: " Zîhar." Li gorî di ayeta pîroz de buhurî, di nava mirovekî de du dil nabin, her wiha ne mumkin e ku pîrekek hem jina yekî û hem jî wekî dayîka wî be. Ne qabil e ku ên ku bi kurînî hatibe girtin bibe mîna kurê mirov ê heqîqî. Qur'an, ev her du adetên ereban zîhar û kurgirtinî nas nekiriye. Ji zîharê re jî wek ciza "Kefaret" aniye. Bi rastî ev dabaş bi dorferehî dê di Sûreyê Mucadele de were. Em ê li wir bi dirêjî rave bikin.

5- Lêbelê, (ewên we ew bi kurînî ji xwe re girtin) bi bavên wan gazî wan bikin, ev li cem Xwedê dadmendtir û rasttir e. Vêca ku hûn nizanibin bavên wan kî ne, ew di dîn de bira û mewlayên we ne. Di ya ku hûn şaş bikin de (ku hûn ne bi bavên wan gazî wan bikin) ji we re guneh tune ye. Lêbelê di ya ku dilên we qesd bike de ji we re webal/guneh heye. Hîç guman tune ye ku Ellah Teala gunehveşêr e, dilovîn e.

6- Pêxember ji bo bawermendan ji nefsa wan bi xwe jî çêtir û li pêştir e. Xanimên Pêxember jî dayîkên bawermendan in. Ên ku xizmên hev in (di warê mîratgiriyê de) li gorî kitêba Xwedê Teala ji bawermendên ensar û muhaciran li pêştir û nêzîktirê hev in. Lê belê ku hûn ji dostên xwe re tiştekî wesiyet bikin ew cuda ye (û caiz e). Ev a me gotî di kitêbê (Lewhul Mehfûzê) de nivîsandî ye.

وَاِذْ اَخَذْنَا مِنَ النَّبِيّنَ مِيثَاقَهُمْ وَمِنْكَ وَمِنْ نُوحٍ وَاِبْرٰهِيمَ
وَمُوسٰى وَعِيسَى ابْنِ مَرْيَمَ وَاَخَذْنَا مِنْهُمْ مِيثَاقًا غَلِيظًا ٧
لِيَسْـَٔلَ الصَّادِقِينَ عَنْ صِدْقِهِمْ وَاَعَدَّ لِلْكَافِرِينَ عَذَابًا اَلِيمًا
٨ يَٓا اَيُّهَا الَّذِينَ اٰمَنُوا اذْكُرُوا نِعْمَةَ اللّٰهِ عَلَيْكُمْ اِذْ جَٓاءَتْكُمْ
جُنُودٌ فَاَرْسَلْنَا عَلَيْهِمْ رِيحًا وَجُنُودًا لَمْ تَرَوْهَا وَكَانَ اللّٰهُ
بِمَا تَعْمَلُونَ بَصِيرًا ٩ اِذْ جَٓاؤُ۫كُمْ مِنْ فَوْقِكُمْ وَمِنْ اَسْفَلَ
مِنْكُمْ وَاِذْ زَاغَتِ الْاَبْصَارُ وَبَلَغَتِ الْقُلُوبُ الْحَنَاجِرَ
وَتَظُنُّونَ بِاللّٰهِ الظُّنُونَا ١٠ هُنَالِكَ ابْتُلِيَ الْمُؤْمِنُونَ وَزُلْزِلُوا زِلْزَالًا
شَدِيدًا ١١ وَاِذْ يَقُولُ الْمُنَافِقُونَ وَالَّذِينَ فِي قُلُوبِهِمْ مَرَضٌ
مَا وَعَدَنَا اللّٰهُ وَرَسُولُهُٓ اِلَّا غُرُورًا ١٢ وَاِذْ قَالَتْ طَٓائِفَةٌ مِنْهُمْ
يَٓا اَهْلَ يَثْرِبَ لَا مُقَامَ لَكُمْ فَارْجِعُوا وَيَسْتَأْذِنُ فَرِيقٌ مِنْهُمُ النَّبِيَّ
يَقُولُونَ اِنَّ بُيُوتَنَا عَوْرَةٌ وَمَا هِيَ بِعَوْرَةٍ اِنْ يُرِيدُونَ اِلَّا
فِرَارًا ١٣ وَلَوْ دُخِلَتْ عَلَيْهِمْ مِنْ اَقْطَارِهَا ثُمَّ سُئِلُوا الْفِتْنَةَ
لَاٰتَوْهَا وَمَا تَلَبَّثُوا بِهَٓا اِلَّا يَسِيرًا ١٤ وَلَقَدْ كَانُوا عَاهَدُوا
اللّٰهَ مِنْ قَبْلُ لَا يُوَلُّونَ الْاَدْبَارَ وَكَانَ عَهْدُ اللّٰهِ مَسْؤُلًا ١٥

قُلْ لَنْ

7- (Ya Muhemmed!) Di bîr bîne, wê dema me ji pêxemberan; ji te, ji Nûh, ji Îbrahîm, ji Mûsa û ji Îsayê kurê Meryemê peyman wergirtibû (ku hay ji wehya Xwedê hebin û bibin peyrewê Wê) û Me sozeke mikûm û giran ji wan wergirt.

8- (Xwedê peyman wergirt) da ku ji pêxemberan bersiva umeta wan bipirse (vêca bawermendan bi cenetê xelat bike) û ji bo kafiran jî ezabekî cansoj amade kiriye.

9- Gelî yên ku bawerî anîne! Qenciya ku Xwedê li we kiriye di bîr bînin, wê dema ku leşkeran êrîşî ser we kir, vêca me jî bahoz û leşkerakî ku we ew nedidîtin bi ser wan de şandin. Xwedê bi ya ku hûn dikin bîner e.

10- Wê dema ku wan (leşkerên pelîd) hem ji ser we ve hem ji jêr we ve êrîş anî ser we, dema çav ji tirsa berevajî bûn, dil gihabûn qirikê û we jî der barê Xwedê de hizrên cuda dikir (Ma gelo ew ê arîkariya me bike?).

11- Ha di wê gavê de bawermend (bi sebirkêşandinê) hatibûn ceribandin û bi awayekî dijwar hatibûn hejandin.

12- Wê demê munafiqan û ew ên ku di dilên wan de nexweşî (zeîfiya îmanê) hebû, digot: Xwedê û Pêxemberê wî meger peymanên xapandinê dane me!

13- Wê demê desteyekê ji munafiqan got: Gelî Yesrîbiyan (xelkê Medînê)! Êdî ji bo we (li vê derê) cih tune ye, heydê vegerin mala xwe! Ji wan (munafiqan) birekê jî ji Pêxember destûr dixwest, digotin: Bi rastî malên me ne asêkirî ne. Hal ev e ku malên wan asêkirî bûn, tenê wan dixwest (ji cengê) birevin.

14- Eger (dijmin) ji hawîrdorê (Medînê) ve bihatina ser wan û ji wan bixwestina ku ji dîn (ji îslamê) vegerin, teqez dê wan ev qebûl bikira.

15- Sond be, wan berê peyman dabû Xwedê ku ew pişta xwe nedin neyar û (ji cengê) nerevin û ev peymana ku wan da Xwedê ew ê teqez jê bêne pirsiyarkirin.

قُلْ لَنْ يَنْفَعَكُمُ الْفِرَارُ اِنْ فَرَرْتُمْ مِنَ الْمَوْتِ اَوِ الْقَتْلِ وَاِذًا
لَا تُمَتَّعُونَ اِلَّا قَل۪يلًا ﴿١٦﴾ قُلْ مَنْ ذَا الَّذ۪ي يَعْصِمُكُمْ مِنَ اللّٰهِ اِنْ اَرَادَ
بِكُمْ سُٓوءًا اَوْ اَرَادَ بِكُمْ رَحْمَةًۜ وَلَا يَجِدُونَ لَهُمْ مِنْ دُونِ
اللّٰهِ وَلِيًّا وَلَا نَص۪يرًا ﴿١٧﴾ قَدْ يَعْلَمُ اللّٰهُ الْمُعَوِّق۪ينَ مِنْكُمْ وَالْقَٓائِل۪ينَ
لِاِخْوَانِهِمْ هَلُمَّ اِلَيْنَاۚ وَلَا يَأْتُونَ الْبَأْسَ اِلَّا قَل۪يلًاۙ ﴿١٨﴾ اَشِحَّةً
عَلَيْكُمْۚ فَاِذَا جَٓاءَ الْخَوْفُ رَاَيْتَهُمْ يَنْظُرُونَ اِلَيْكَ تَدُورُ اَعْيُنُهُمْ
كَالَّذ۪ي يُغْشٰى عَلَيْهِ مِنَ الْمَوْتِۚ فَاِذَا ذَهَبَ الْخَوْفُ سَلَقُوكُمْ
بِاَلْسِنَةٍ حِدَادٍ اَشِحَّةً عَلَى الْخَيْرِۜ اُو۬لٰٓئِكَ لَمْ يُؤْمِنُوا فَاَحْبَطَ اللّٰهُ
اَعْمَالَهُمْۜ وَكَانَ ذٰلِكَ عَلَى اللّٰهِ يَس۪يرًا ﴿١٩﴾ يَحْسَبُونَ الْاَحْزَابَ لَمْ
يَذْهَبُواۚ وَاِنْ يَأْتِ الْاَحْزَابُ يَوَدُّوا لَوْ اَنَّهُمْ بَادُونَ فِي الْاَعْرَابِ
يَسْـَٔلُونَ عَنْ اَنْبَٓائِكُمْۜ وَلَوْ كَانُوا ف۪يكُمْ مَا قَاتَلُٓوا اِلَّا
قَل۪يلًا ﴿٢٠﴾ لَقَدْ كَانَ لَكُمْ ف۪ي رَسُولِ اللّٰهِ اُسْوَةٌ حَسَنَةٌ لِمَنْ
كَانَ يَرْجُوا اللّٰهَ وَالْيَوْمَ الْاٰخِرَ وَذَكَرَ اللّٰهَ كَث۪يرًاۜ ﴿٢١﴾ وَلَمَّا
رَاَ الْمُؤْمِنُونَ الْاَحْزَابَۙ قَالُوا هٰذَا مَا وَعَدَنَا اللّٰهُ وَرَسُولُهُ
وَصَدَقَ اللّٰهُ وَرَسُولُهُۘ وَمَا زَادَهُمْ اِلَّٓا ا۪يمَانًا وَتَسْل۪يمًاۜ ﴿٢٢﴾

**16**- (Resûlê min! Ji wan re) Bibêje: Eger hûn ji tirsa mirinê yan jî ji tirsa kuştinê ji şer birevin, bizanin ku ev rev tu feydê nade we û wê çaxê jî hûn ê bes demeke hindik (bi qasî temenê xwe) bêne jiyandin.

**17**- Bibêje: Eger Xwedê bixwaze zerarê bide we, ew kî ye ku we jê biparêze?!. Yan jî Ew bixwaze rehmê li we bike (ma kî dikare zerarê bide we)? Ew dê ji bilî Xwedê ji bo xwe tu dost û arîkarekî nebînin.

**18**- Bêguman Xwedê ji nav we, ew ên ku xelkê ji çûna cîhadê didin paş û ew ên ku ji birayên xwe (yên munafiq) re dibêjin: "Werin beşdarî me bibin (bi Muhemmed re dernekevin cîhadê)" baş bi wan dizane û jixwe kêm caran tênê şer.

**19**- Ew munafiq li ser (arîkariya) we pir çikûs û nemerd in. Vêca dema tirs bi ser wan de bê, tu wan dibînî ku ew li te dinêrin mîna yê ku mirinê ew girtibe, çavên wan li dor wan dileyîzin. Vêca dema ku tirs ji ser wan rabû, bi zimanên xwe yên tûj we diêşînin û ji temahkarî malê xenîmetê ji te dixwazin. Ha van bawerî neaniye. Vêca Xwedê kirinên wan pûç kirine û ev li cem Xwedê hêsan e.

**20**- Ji wan munafiqan we ye ku hêzên hevkar ên dijmin hê jî ji dora Medînê neçûne. Eger ku leşkerên hevalbendan dîsa vegerin (şerê we), ew munafiq dixwazin ku herin çolê, bikevin nava bedewiyên ereb û ji dûr ve der heqê we de xeberan bigirin. Jixwe eger ew di nav we de bûna jî, dê hindikî şer bikirina.

**21**- (Ġelî bawermendan!) Sond be ji bo we, di (jiyan û tevgerên) resûlê Xwedê de, ji bo wî kesê ku (qenciya) Xwedê û roja axretê hêvî bike û zikrê Xwedê jî pir dike, mînak û nimûneyeke spehî û kamil heye.

**22**- Çi dema ku bawermendan hêzên hevalbendan dîtin, gotin: Ha va ye, ya ku Xwedê û qasidê wî peymana wê dabû me! Xwedê û qasidê wî rast gotine. Ev (hatina hêzên hevalbend) tenê bawerî û radestbûna wan ji Xwedê re zêde kiriye.

مِنَ الْمُؤْمِنِينَ رِجَالٌ صَدَقُوا مَا عَاهَدُوا اللّٰهَ عَلَيْهِۚ فَمِنْهُمْ
مَنْ قَضٰى نَحْبَهُ وَمِنْهُمْ مَنْ يَنْتَظِرُۘ وَمَا بَدَّلُوا تَبْدِيلاًۙ ﴿٢٣﴾
لِيَجْزِيَ اللّٰهُ الصَّادِقِينَ بِصِدْقِهِمْ وَيُعَذِّبَ الْمُنَافِقِينَ اِنْ شَٓاءَ
اَوْ يَتُوبَ عَلَيْهِمْۜ اِنَّ اللّٰهَ كَانَ غَفُورًا رَحِيمًاۚ ﴿٢٤﴾ وَرَدَّ اللّٰهُ
الَّذِينَ كَفَرُوا بِغَيْظِهِمْ لَمْ يَنَالُوا خَيْرًاۜ وَكَفَى اللّٰهُ الْمُؤْمِنِينَ
الْقِتَالَۜ وَكَانَ اللّٰهُ قَوِيًّا عَزِيزًاۚ ﴿٢٥﴾ وَاَنْزَلَ الَّذِينَ ظَاهَرُوهُمْ
مِنْ اَهْلِ الْكِتَابِ مِنْ صَيَاصِيهِمْ وَقَذَفَ فِي قُلُوبِهِمُ الرُّعْبَ
فَرِيقًا تَقْتُلُونَ وَتَأْسِرُونَ فَرِيقًاۚ ﴿٢٦﴾ وَاَوْرَثَكُمْ اَرْضَهُمْ
وَدِيَارَهُمْ وَاَمْوَالَهُمْ وَاَرْضًا لَمْ تَطَؤُهَاۜ وَكَانَ اللّٰهُ عَلٰى
كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرًاۚ ﴿٢٧﴾ يَٓا اَيُّهَا النَّبِيُّ قُلْ لِاَزْوَاجِكَ اِنْ كُنْتُنَّ
تُرِدْنَ الْحَيٰوةَ الدُّنْيَا وَزِينَتَهَا فَتَعَالَيْنَ اُمَتِّعْكُنَّ وَاُسَرِّحْكُنَّ
سَرَاحًا جَمِيلاً ﴿٢٨﴾ وَاِنْ كُنْتُنَّ تُرِدْنَ اللّٰهَ وَرَسُولَهُ وَالدَّارَ
الْاٰخِرَةَ فَاِنَّ اللّٰهَ اَعَدَّ لِلْمُحْسِنَاتِ مِنْكُنَّ اَجْرًا عَظِيمًا ﴿٢٩﴾
يَا نِسَٓاءَ النَّبِيِّ مَنْ يَأْتِ مِنْكُنَّ بِفَاحِشَةٍ مُبَيِّنَةٍ يُضَاعَفْ
لَهَا الْعَذَابُ ضِعْفَيْنِۜ وَكَانَ ذٰلِكَ عَلَى اللّٰهِ يَسِيرًا ﴿٣٠﴾
وَمَنْ

**23**- Ji bawermendan hin zilamên wisa hene ku wan ew peymana dane Xwedê bi cih aniye. Vêca hin ji wan nezra xwe aniye cih; canê xwe feda kirin û hin ji wan jî çavnêriyê (li şehîdbûnê yan jî li serkeftinê) dikin. Xwedê tu car ehd û peymana xwe neguhartiye.

**24**- (Ev tev) da ku Xwedê rastgoyan bi rastbêjiya wan xelat bike û munafiqan jî -eger ew bivê- dê bide ezabdan, yan jî (eger ew tobe bikin) dê tobeya wan qebûl bike. Bêguman Xwedê Teala gunehjêbir û dilovîn e.

**25**- Ew ên ku kafir bûne, Xwedê ew bi kîn û xezeba wan ve vegerandin. Wan tu feyde bi dest xwe ve neanî. Xwedê di şer de besî bawermendan e. Bêguman Xwedê xurt û desthilat e.

**26**- Xwedê ji xweykitêban ew ên ku hevkariya wan (hevalbendên muşrik) kirin, ew ji keleyên wan anîne xwarê û tirsa we avêtiye dilên wan, vêca hûn hinekan ji wan (ji ber xiyaneta wan) dikujin, hinekan ji wan jî (jin û zarokan) dîl digirin.

**27**- Xwedê Teala hûn kirin mîratgirên cih, xanî û serwetên wan û hûn kirin mîratgirê erdeke ku hê jî we pê lê nekiriye. Bêguman Xwedê li ser her tiştî kara ye.

**28**- Ey Pêxember! Ji xanimên xwe re bibêje: Eger hûn jiyana dinyayê û xişrê wê dixwazin, werin ez mehra we bidim we û bi rindî we berdim.

**29**- Eger hûn Xwedê, resûlê wî û mala axretê (bihiştê) dixwazin, bizanin ku Xwedê Teala ji nav we, ji bo qencîkarên rast û durist xelateke mezin amade kiriye.

**30**- Gelî xanimên Pêxember! Ji we kî bêtoretiyeke aşkera bike, ezabê wê du qat tê zêdekirin. Ev li cem Xwedê hêsan e.

وَمَنْ يَقْنُتْ مِنْكُنَّ لِلّٰهِ وَرَسُولِهٖ وَتَعْمَلْ صَالِحًا نُؤْتِهَٓا
اَجْرَهَا مَرَّتَيْنِۙ وَاَعْتَدْنَا لَهَا رِزْقًا كَرِيمًا ﴿٣١﴾ يَا نِسَٓاءَ
النَّبِيِّ لَسْتُنَّ كَاَحَدٍ مِنَ النِّسَٓاءِ اِنِ اتَّقَيْتُنَّ فَلَا تَخْضَعْنَ
بِالْقَوْلِ فَيَطْمَعَ الَّذ۪ي ف۪ي قَلْبِه۪ مَرَضٌ وَقُلْنَ قَوْلًا مَعْرُوفًاۚ
﴿٣٢﴾ وَقَرْنَ ف۪ي بُيُوتِكُنَّ وَلَا تَبَرَّجْنَ تَبَرُّجَ الْجَاهِلِيَّةِ
الْاُو۫لٰى وَاَقِمْنَ الصَّلٰوةَ وَاٰت۪ينَ الزَّكٰوةَ وَاَطِعْنَ اللّٰهَ
وَرَسُولَهُۜ اِنَّمَا يُر۪يدُ اللّٰهُ لِيُذْهِبَ عَنْكُمُ الرِّجْسَ اَهْلَ
الْبَيْتِ وَيُطَهِّرَكُمْ تَطْه۪يرًاۚ ﴿٣٣﴾ وَاذْكُرْنَ مَا يُتْلٰى ف۪ي
بُيُوتِكُنَّ مِنْ اٰيَاتِ اللّٰهِ وَالْحِكْمَةِۜ اِنَّ اللّٰهَ كَانَ لَط۪يفًا خَب۪يرًاۚ
﴿٣٤﴾ اِنَّ الْمُسْلِم۪ينَ وَالْمُسْلِمَاتِ وَالْمُؤْمِن۪ينَ وَالْمُؤْمِنَاتِ
وَالْقَانِت۪ينَ وَالْقَانِتَاتِ وَالصَّادِق۪ينَ وَالصَّادِقَاتِ
وَالصَّابِر۪ينَ وَالصَّابِرَاتِ وَالْخَاشِع۪ينَ وَالْخَاشِعَاتِ
وَالْمُتَصَدِّق۪ينَ وَالْمُتَصَدِّقَاتِ وَالصَّٓائِم۪ينَ وَالصَّٓائِمَاتِ
وَالْحَافِظ۪ينَ فُرُوجَهُمْ وَالْحَافِظَاتِ وَالذَّاكِر۪ينَ اللّٰهَ
كَث۪يرًا وَالذَّاكِرَاتِ اَعَدَّ اللّٰهُ لَهُمْ مَغْفِرَةً وَاَجْرًا عَظ۪يمًا ﴿٣٥﴾

**31-** Kî ji we (ey xanimên Pêxember!) bi gotina Xwedê û Resûlê wî bike û digel vê jî karê qenc bike, em ê xelata wê du qat bidinê û Me ji bo wê rizqekî rind amade kiriye.

**32-** Gelî xanimên Pêxember! Hûn ne wekî tu jinên din in, eger hûn xwe ji bêemriya Xwedê û Resûlê wî biparêzin (hûn di ser her jinê re ne). Nexwe li hember zilamên biyanî gotinên xwe nerm û nazik nekin, vêca yê ku di dilê wî de nexweşî /nîfaq heye ku meyla wî çêbe. Hûn bi gotineke birêz û edeb biaxivin.

**33-** Di malên xwe de bi rêzdarî rûnin û mîna jinên berî îslamê bixeml û xişir xwe bernedin derve. Berdewamî nimêj bikin, zekata malê xwe bidin û bi gotina Xwedê û Pêxemberê wî bikin. Gelî ehlê Pêxember! Xwedê bi vê pend û şîretê bes dixwaze qirêjiya (ya madî û manewî) ji ser we rake û we ji her kirêtiyê pak û paqij bike.

Ji bo tu ehlê beytê bi xelkê bidî naskirin ji kerema xwe li Meraxiyê binêre!

**34-** Ayetên Xwedê û hedîsên Pêxember ew ên ku di malên we de têne xwendin bînin bîra xwe. Bêguman Xwedê her tiştî bi temamî dizane û pê agahdar e.

**35-** Bêguman, zilamên misliman û jinên misliman, zilamên bawermend û jinên bawermend, zilamên îbadetkar û jinên îbadetkar, zilamên rastgo û jinên rastbêj, zilamên xweragir û jinên sebirkêş, zilamên Xwedêtirs û jinên Xwdêtirs, zilamên xêrker û jinên xêrker, zilamên rojîgir û jinên rojîgir, zilamên namûsparêz û jinên namûsparêz, zilamên ji Xwedê re pir zikirker û jinên zikirker, teqez Xwedê ji bo wan lêborînek û xelateke mezin amade kiriye.

وَمَا كَانَ لِمُؤْمِنٍ وَلَا مُؤْمِنَةٍ اِذَا قَضَى اللّٰهُ وَرَسُولُهُ اَمْرًا اَنْ يَكُونَ
لَهُمُ الْخِيَرَةُ مِنْ اَمْرِهِمْ وَمَنْ يَعْصِ اللّٰهَ وَرَسُولَهُ فَقَدْ ضَلَّ ضَلَالًا
مُبِينًا ﴿٣٦﴾ وَاِذْ تَقُولُ لِلَّذ۪ٓي اَنْعَمَ اللّٰهُ عَلَيْهِ وَاَنْعَمْتَ عَلَيْهِ اَمْسِكْ
عَلَيْكَ زَوْجَكَ وَاتَّقِ اللّٰهَ وَتُخْف۪ي ف۪ي نَفْسِكَ مَا اللّٰهُ مُبْد۪يهِ
وَتَخْشَى النَّاسَ وَاللّٰهُ اَحَقُّ اَنْ تَخْشٰيهُ فَلَمَّا قَضٰى زَيْدٌ مِنْهَا
وَطَرًا زَوَّجْنَاكَهَا لِكَيْ لَا يَكُونَ عَلَى الْمُؤْمِن۪ينَ حَرَجٌ ف۪ٓي اَزْوَاجِ
اَدْعِيَٓائِهِمْ اِذَا قَضَوْا مِنْهُنَّ وَطَرًا وَكَانَ اَمْرُ اللّٰهِ مَفْعُولًا ﴿٣٧﴾ مَا كَانَ
عَلَى النَّبِيِّ مِنْ حَرَجٍ ف۪يمَا فَرَضَ اللّٰهُ لَهُ سُنَّةَ اللّٰهِ فِي الَّذ۪ينَ
خَلَوْا مِنْ قَبْلُ وَكَانَ اَمْرُ اللّٰهِ قَدَرًا مَقْدُورًا ﴿٣٨﴾ اَلَّذ۪ينَ يُبَلِّغُونَ
رِسَالَاتِ اللّٰهِ وَيَخْشَوْنَهُ وَلَا يَخْشَوْنَ اَحَدًا اِلَّا اللّٰهَ وَكَفٰى
بِاللّٰهِ حَس۪يبًا ﴿٣٩﴾ مَا كَانَ مُحَمَّدٌ اَبَٓا اَحَدٍ مِنْ رِجَالِكُمْ وَلٰكِنْ
رَسُولَ اللّٰهِ وَخَاتَمَ النَّبِيّ۪نَ وَكَانَ اللّٰهُ بِكُلِّ شَيْءٍ عَل۪يمًا ﴿٤٠﴾
يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا اذْكُرُوا اللّٰهَ ذِكْرًا كَث۪يرًا ﴿٤١﴾ وَسَبِّحُوهُ
بُكْرَةً وَاَص۪يلًا ﴿٤٢﴾ هُوَ الَّذ۪ي يُصَلّ۪ي عَلَيْكُمْ وَمَلٰٓئِكَتُهُ
لِيُخْرِجَكُمْ مِنَ الظُّلُمَاتِ اِلَى النُّورِ وَكَانَ بِالْمُؤْمِن۪ينَ رَح۪يمًا ﴿٤٣﴾

تَحِيَّتُهُمْ

**36**- Dema ku Xwedê û resûlê wî li ser kêşeyekê hukim vebirîn, ji bo tu mêr û jineke bawermend maf tune ye ku li gorî daxwaza dilê xwe tevbigere. Kî bi gotina Xwedê û Resûlê wî neke, êdî bi rastî wî bi rewşekî aşîkar rê şaş kiriye.

**37**- Wê dema ji bo wî yê ku Xwedê (bi îslamê) qencî lê kirî û te jî (bi azadkirina wî) qencî lê kiribû, te digot: Jina xwe bernede û (der barê wê de) ji Xwedê bitirse! Hal ev e ku tiştê ku Xwedê dixwaze wê derîne, ji tirsa lomekaran te ew di dilê xwe de vedişart. Hal ev e yê ku heq e tu jê bitirsî Xwedê ye. Vêca çi dema ku Zeyd pêwendiya xwe jê birî, me ew li te mehr kir, da ku (ji vir û pê de) der barê zewaca bi pîrekên kurgirtiyên xwe, dema ku wan destê xwe li ser wan hilanî, tu guneh ji ser bawermendan tune ye ku wan mehr bikin. Fermana Xwedê her bicih e.

Ev zatê ku behsa wî di vê ayetê de buhurî Zeyd kurê Harîse ye. Hê bi zarokatî dîl hatibû girtin. Xedîce bi koletî ew kirrîbû û ji Pêxember re diyarî kiribû, Pêxember jî, ew azad kir û ji xwe re kir zirkur. Pêxember (s) pir ji Zeydî hez dikir û keçmeta xwe Zeynep keça Cehş lê mehr kir. Lêbelê Zeynebê bi Zeyd re neborand. Lewra Zeyneb jineke esîlzade bû, nexwest ku bi koleyekî azadkirî re bizewice lê ji bo xatirê Pêxember pê re zewicî.

**38**- Der barê ya ku Xwedê ji Pêxember re helal kiriye de tu guneh li serê nîn e ku wê bîne cih. Ev qanûna Xwedê ye der barê wan pêxemberan de, ew ên ku berê derbas bûne. Fermana Xwedê misoger dê were cih, (ev) qedereke nivîsandî ye.

**39**- (Ew ên ku berê derbas bûne;) ew pêxemberên ku wehya Xwedê radigihînin û jê ditirsin û ji Xwedê pê ve ji tu kesê din natirsin. Ji hesabgirî ve Xwedê her bi tenê bes e.

**40**- Muhemmed, ji zilamên we ne bavê kesî ji we ye. Lê belê ew resûlê Xwedê û pêşengê pêxemberan e. Xwedê teqez bi her tiştî dizane.

**41**- Gelî yên ku bawerî anîne! Zikrê Xwedê pir pir bikin.

**42**- Di sibeh û êvarê de wî pak bidêrin.

**43**- Xwedê ye, yê ku rehma xwe li we dike û firîşteyên wî jî (lêborîna we dixwazin) da ku we ji tarîtiyên kufrê derxe ber ronahiya îmanê. Xwedê digel bawermendan pir pir dilovîn e.

تَحِيَّتُهُمْ يَوْمَ يَلْقَوْنَهُ سَلَامٌ وَاَعَدَّ لَهُمْ اَجْرًا كَرِيمًا ﴿٤٤﴾
يَا اَيُّهَا النَّبِيُّ اِنَّا اَرْسَلْنَاكَ شَاهِدًا وَمُبَشِّرًا وَنَذِيرًا ﴿٤٥﴾ وَدَاعِيًا
اِلَى اللّٰهِ بِاِذْنِهِ وَسِرَاجًا مُنِيرًا ﴿٤٦﴾ وَبَشِّرِ الْمُؤْمِنِينَ بِاَنَّ لَهُمْ
مِنَ اللّٰهِ فَضْلًا كَبِيرًا ﴿٤٧﴾ وَلَا تُطِعِ الْكَافِرِينَ وَالْمُنَافِقِينَ
وَدَعْ اَذٰيهُمْ وَتَوَكَّلْ عَلَى اللّٰهِ وَكَفٰى بِاللّٰهِ وَكِيلًا ﴿٤٨﴾ يَا اَيُّهَا الَّذِينَ
اٰمَنُوا اِذَا نَكَحْتُمُ الْمُؤْمِنَاتِ ثُمَّ طَلَّقْتُمُوهُنَّ مِنْ قَبْلِ اَنْ
تَمَسُّوهُنَّ فَمَا لَكُمْ عَلَيْهِنَّ مِنْ عِدَّةٍ تَعْتَدُّونَهَا فَمَتِّعُوهُنَّ
وَسَرِّحُوهُنَّ سَرَاحًا جَمِيلًا ﴿٤٩﴾ يَا اَيُّهَا النَّبِيُّ اِنَّا اَحْلَلْنَا لَكَ
اَزْوَاجَكَ الّٰتِي اٰتَيْتَ اُجُورَهُنَّ وَمَا مَلَكَتْ يَمِينُكَ
مِمَّا اَفَاءَ اللّٰهُ عَلَيْكَ وَبَنَاتِ عَمِّكَ وَبَنَاتِ عَمَّاتِكَ
وَبَنَاتِ خَالِكَ وَبَنَاتِ خَالَاتِكَ الّٰتِي هَاجَرْنَ مَعَكَ
وَامْرَاَةً مُؤْمِنَةً اِنْ وَهَبَتْ نَفْسَهَا لِلنَّبِيِّ اِنْ اَرَادَ النَّبِيُّ
اَنْ يَسْتَنْكِحَهَا خَالِصَةً لَكَ مِنْ دُونِ الْمُؤْمِنِينَ قَدْ عَلِمْنَا
مَا فَرَضْنَا عَلَيْهِمْ فِي اَزْوَاجِهِمْ وَمَا مَلَكَتْ اَيْمَانُهُمْ
لِكَيْلَا يَكُونَ عَلَيْكَ حَرَجٌ وَكَانَ اللّٰهُ غَفُورًا رَحِيمًا ﴿٥٠﴾

**44**- Roja ku ew (bawermend) digihên hizûra Xwedê, pêşwaziya wan ji hev re 'Silav' e. Xwedê ji bo wan padaşeke rind amade kiriye.

**45**- Ey Pêxember! Bi rastî me tu bi şahidî, bi mizgînberî û bi hişyarkerî hinartiye.

**46**- (Me tu hinartiye) da ku bi destûra Xwedê tu bibî dozkarê bal riya Xwedê û bibî çirayeke rewnaq û ronker.

**47**- Mizgînê bide bawermendan ku bêguman ji cem Xwedê, ji bo wan qenciyeke mezin heye.

**48**- Bi gotina kafir û munafiqan meke, guh mede eziyeta wan, xwe bispêre Xwedê, bi wekîlî Xwedê her bes e.

**49**- Gelî yên ku bawerî anîne! Dema ku we jinên bawermend li xwe mehr kirin, paşê we ew berdan beriya hûn herin livîna wan, vêca ji bo we li ser wan tu 'idde (dema nemêrkirinê) tune ye ku hûn li ser wan bijimêrin. Nexwe ji malê xwe qenciyekê bi wan bikin û bi awayekî rind riya wan vekin.

**50**- Ey Pêxember! Me ji bo te ew xanimên te, yên ku te mehra wan daye, ew cariyeyên ku Xwedê bi xenîmetî dane te û dotmamên te, keçmetên te, keçxalên te, keçxaletên te; ew ên ku bi te re hicret kirin, mehrkirina wan li te helal kiriye. Eger jineke bawermend xwe bexşî Pêxember bike û Pêxember jî bixwaze wê mehr bike -ne ji bawermendên din re- tenê ji te re (me helal kiriye). Bi rastî der barê jinên bawermendan û qerwaşên ku di binê destê wan de ne, me ji wan re tiştê ku ferz kiriye daye zanîn. (Di vê mijarê de tiştê ku lazim e ew bikin me ji wan re ragihandiye) da ku ji te re tu guneh û zehmetî çênebe. Xwedê gunehjêbir û dilovîn e.

تُرْجِي مَنْ تَشَاءُ مِنْهُنَّ وَتُـْٔوِي اِلَيْكَ مَنْ تَشَاءُ وَمَنِ ابْتَغَيْتَ
مِمَّنْ عَزَلْتَ فَلَا جُنَاحَ عَلَيْكَ ذٰلِكَ اَدْنٰى اَنْ تَقَرَّ اَعْيُنُهُنَّ
وَلَا يَحْزَنَّ وَيَرْضَيْنَ بِمَا اٰتَيْتَهُنَّ كُلُّهُنَّ وَاللّٰهُ يَعْلَمُ مَا فِي
قُلُوبِكُمْ وَكَانَ اللّٰهُ عَلِيمًا حَلِيمًا ﴿٥١﴾ لَا يَحِلُّ لَكَ النِّسَاءُ
مِنْ بَعْدُ وَلَا اَنْ تَبَدَّلَ بِهِنَّ مِنْ اَزْوَاجٍ وَلَوْ اَعْجَبَكَ حُسْنُهُنَّ
اِلَّا مَا مَلَكَتْ يَمِينُكَ وَكَانَ اللّٰهُ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ رَقِيبًا
﴿٥٢﴾ يَا اَيُّهَا الَّذِينَ اٰمَنُوا لَا تَدْخُلُوا بُيُوتَ النَّبِيِّ اِلَّا اَنْ يُؤْذَنَ
لَكُمْ اِلٰى طَعَامٍ غَيْرَ نَاظِرِينَ اِنٰيهُ وَلٰكِنْ اِذَا دُعِيتُمْ
فَادْخُلُوا فَاِذَا طَعِمْتُمْ فَانْتَشِرُوا وَلَا مُسْتَأْنِسِينَ لِحَدِيثٍ
اِنَّ ذٰلِكُمْ كَانَ يُؤْذِي النَّبِيَّ فَيَسْتَحْيِي مِنْكُمْ وَاللّٰهُ
لَا يَسْتَحْيِي مِنَ الْحَقِّ وَاِذَا سَاَلْتُمُوهُنَّ مَتَاعًا فَسْـَٔلُوهُنَّ
مِنْ وَرَاءِ حِجَابٍ ذٰلِكُمْ اَطْهَرُ لِقُلُوبِكُمْ وَقُلُوبِهِنَّ وَمَا كَانَ
لَكُمْ اَنْ تُؤْذُوا رَسُولَ اللّٰهِ وَلَا اَنْ تَنْكِحُوا اَزْوَاجَهُ مِنْ
بَعْدِهِ اَبَدًا اِنَّ ذٰلِكُمْ كَانَ عِنْدَ اللّٰهِ عَظِيمًا ﴿٥٣﴾ اِنْ
تُبْدُوا شَيْـًٔا اَوْ تُخْفُوهُ فَاِنَّ اللّٰهَ كَانَ بِكُلِّ شَيْءٍ عَلِيمًا ﴿٥٤﴾

لَا جُنَاحَ

**51**- Ji wan (xanimên xwe) ya ku tu bivê, tu dê wê bihêlî paş, ya ku tu wê bivê jî tu dê wê bînî cem xwe. Ji wan jinên ku te ew ji xwe dûr kirine tu kîjanê bivê ji te re tu guneh tune ye ku dîsa tu wê bînî cem xwe. Ha ev munasibtir û nêzîktirî ya ku çavên wan pê ronî bibin, ewê xemgîn jî nebin û bi ya ku tu bidî wan hemû yê pê razî bibin. Xwedê bi ya ku di dilên we de ye dizane. Xwedê her zana û bêhnfireh e.

**52**- (Ya Pêxember!) Ji van (xanimên te) û pê de êdî jin ji te re ne helal in. (Ji te re ne helal e) ku tu wan bi hin jinên din biguherînî jî, çendî spehîtiya wan li xweşa te biçe jî. Lê belê qerwaşên ku di binê destê te de ne, ew cuda ne. Xwedê li ser her tiştî çavdêr e.

**53**- Gelî yên ku we bawerî aniye! Neçin mala Pêxember, lê belê ji bo xwarinekê ku destûr ji we re bê dayîn, ew cuda ye. (Dema ku ji bo xwarinekê hûn herin mala Pêxember jî) çavnêriya pehtina xwarinê nekin. Lê belê dema ku hûn bêne vexwendin herin mala wî û dema ku we xwarin xwar jî di cih de belav bibin (û piştî xwarinê li mala Pêxember) xwe noqî sohbetê nekin. Lewra ev hereketa we Pêxember diêşîne. Lê belê ew şerm dike (vê ji we re bibêje). Lê belê Xwedê ji gotina heqiyê şerm nake. Dema ku hûn tiştekî ji xanimên Pêxember bixwazin li pişt perdeyekê bixwazin. Ev hem ji bo dilên we hem jî ji bo dilên wan bizaveke paktir e. Ji we re hîç ne helal e ku hûn Pêxemberê Xwedê biêşînin û piştî wî xanimên wî mehr bikin. Bêguman ev tevgera we li nik Xwedê (gunehekî) mezin e.

**54**- Eger hûn tiştekî aşkera bikin an jî wî veşêrin, vêca birastî Xwedê bi her tiştî zana ye.

لَا جُنَاحَ عَلَيْهِنَّ فٖى اٰبَائِهِنَّ وَلَٓا اَبْنَائِهِنَّ وَلَٓا اِخْوَانِهِنَّ وَلَٓا
اَبْنَاءِ اِخْوَانِهِنَّ وَلَٓا اَبْنَاءِ اَخَوَاتِهِنَّ وَلَا نِسَائِهِنَّ وَلَا مَا
مَلَكَتْ اَيْمَانُهُنَّ وَاتَّقٖينَ اللّٰهَ اِنَّ اللّٰهَ كَانَ عَلٰى كُلِّ
شَيْءٍ شَهٖيدًا ﴿٥٥﴾ اِنَّ اللّٰهَ وَمَلٰٓئِكَتَهُ يُصَلُّونَ عَلَى النَّبِيِّ
يَٓا اَيُّهَا الَّذٖينَ اٰمَنُوا صَلُّوا عَلَيْهِ وَسَلِّمُوا تَسْلٖيمًا ﴿٥٦﴾ اِنَّ الَّذٖينَ
يُؤْذُونَ اللّٰهَ وَرَسُولَهُ لَعَنَهُمُ اللّٰهُ فِى الدُّنْيَا وَالْاٰخِرَةِ
وَاَعَدَّ لَهُمْ عَذَابًا مُهٖينًا ﴿٥٧﴾ وَالَّذٖينَ يُؤْذُونَ الْمُؤْمِنٖينَ
وَالْمُؤْمِنَاتِ بِغَيْرِ مَا اكْتَسَبُوا فَقَدِ احْتَمَلُوا بُهْتَانًا وَاِثْمًا
مُبٖينًا ﴿٥٨﴾ يَٓا اَيُّهَا النَّبِيُّ قُلْ لِاَزْوَاجِكَ وَبَنَاتِكَ وَنِسَٓاءِ الْمُؤْمِنٖينَ
يُدْنٖينَ عَلَيْهِنَّ مِنْ جَلَابٖيبِهِنَّ ذٰلِكَ اَدْنٰٓى اَنْ يُعْرَفْنَ
فَلَا يُؤْذَيْنَ وَكَانَ اللّٰهُ غَفُورًا رَحٖيمًا ﴿٥٩﴾ لَئِنْ لَمْ يَنْتَهِ
الْمُنَافِقُونَ وَالَّذٖينَ فٖى قُلُوبِهِمْ مَرَضٌ وَالْمُرْجِفُونَ فِى
الْمَدٖينَةِ لَنُغْرِيَنَّكَ بِهِمْ ثُمَّ لَا يُجَاوِرُونَكَ فٖيهَٓا اِلَّا قَلٖيلًا ﴿٦٠﴾
مَلْعُونٖينَ اَيْنَمَا ثُقِفُٓوا اُخِذُوا وَقُتِّلُوا تَقْتٖيلًا ﴿٦١﴾ سُنَّةَ اللّٰهِ
فِى الَّذٖينَ خَلَوْا مِنْ قَبْلُ وَلَنْ تَجِدَ لِسُنَّةِ اللّٰهِ تَبْدٖيلًا ﴿٦٢﴾

**55**- Ji xanimên Pêxember re tu guneh nîn e ku bavên wan, kurên wan, birayên wan, biraziyên wan, xwarziyên wan û jinên bawermend û cariye û koleyên di bin destê wan de ne (bêperde) wan bibînin. (Gelî xanimên Pêxember!) Xwe ji heramên Xwedê biparêzin, bêguman Xwedê li ser her tiştî hazir û nazir e.

**56**- Bêguman Xwedê û firîşteyên wî selatan li ser Muhemmed (s) didin (şeref û rûmeta wî bilind dikin). Gelî yên ku bawerî anîne! Nexwe hûn jî selatan li serê bidin û bi têkûzî wî selam bikin.

**57**- Bêguman ew ên ku Xwedê û Resûlê wî biêşînin, Xwedê hem li dinyayê hem jî li axiretê lanet li wan barandiye û ji wan re ezabekî riswaker amade kiriye.

**58**- Ew ên ku zilamên bawermend û pîrekên bawermend der barê sûcekî de ku wan nekiriye biêşînin, vêca bi rastî wan bêbextî û gunehekî aşkera kiriye.

**59**- Ey Pêxember! Ji xanimên xwe re, ji keçên xwe re û ji pîrekên bawermendan re bibêje: (Dema ku ji bo pêdiviyekê derkevin derve), Bila bedena xwe bi perdepoşiyên xwe binixumînin. Ev ya herî nêzik e ku ew (ji dawpîsan) bêne naskirin, vêca neyêne êşandin. Bêguman Xwedê gunehjêbir û dilovîn e.

**60**- Sond be, eger ku munafiq û ew ên ku di dilê wan de nexweşiya (fihûşê) heye û ew ên ku li Medînê xeberên derew belav dikin, dev ji van (bizavên xwe) bernedin emê destûra te li wan bidin (ku tu şerê wan bikî û wan ji Medînê derînî). Piştre li Medînê li cem te ewê bes demeke hindik bişên bimînin.

**61**- Lenet li wan hatiye barandin. Ew li ku derê bêne bidestxistin ew ê bêne girtin û bêne kuştin.

**62**- Der barê wan (munafiqên ku berê hatine û çûne) de adetê Xwedê ev e; (ew ên ku li hemberî Pêxemberan bêbextî dikirin dihatin kuştin) û tu yê ji adetê Xwedê re teqez çu guhertinê nebînî.

يَسْـَٔلُكَ النَّاسُ عَنِ السَّاعَةِ قُلْ اِنَّمَا عِلْمُهَا عِنْدَ اللّٰهِ وَمَا يُدْرِيكَ
لَعَلَّ السَّاعَةَ تَكُونُ قَرِيبًا ﴿٦٣﴾ اِنَّ اللّٰهَ لَعَنَ الْكَافِرِينَ وَاَعَدَّ لَهُمْ
سَعِيرًا ﴿٦٤﴾ خَالِدِينَ فِيهَا اَبَدًا لَا يَجِدُونَ وَلِيًّا وَلَا نَصِيرًا ﴿٦٥﴾ يَوْمَ
تُقَلَّبُ وُجُوهُهُمْ فِي النَّارِ يَقُولُونَ يَا لَيْتَنَا اَطَعْنَا اللّٰهَ وَاَطَعْنَا
الرَّسُولَا ﴿٦٦﴾ وَقَالُوا رَبَّنَا اِنَّا اَطَعْنَا سَادَتَنَا وَكُبَرَاءَنَا فَاَضَلُّونَا
السَّبِيلَا ﴿٦٧﴾ رَبَّنَا اٰتِهِمْ ضِعْفَيْنِ مِنَ الْعَذَابِ وَالْعَنْهُمْ لَعْنًا كَبِيرًا
﴿٦٨﴾ يَا اَيُّهَا الَّذِينَ اٰمَنُوا لَا تَكُونُوا كَالَّذِينَ اٰذَوْا مُوسٰى
فَبَرَّاَهُ اللّٰهُ مِمَّا قَالُوا وَكَانَ عِنْدَ اللّٰهِ وَجِيهًا ﴿٦٩﴾ يَا اَيُّهَا
الَّذِينَ اٰمَنُوا اتَّقُوا اللّٰهَ وَقُولُوا قَوْلًا سَدِيدًا ﴿٧٠﴾ يُصْلِحْ لَكُمْ
اَعْمَالَكُمْ وَيَغْفِرْ لَكُمْ ذُنُوبَكُمْ وَمَنْ يُطِعِ اللّٰهَ وَرَسُولَهُ
فَقَدْ فَازَ فَوْزًا عَظِيمًا ﴿٧١﴾ اِنَّا عَرَضْنَا الْاَمَانَةَ عَلَى السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضِ وَالْجِبَالِ فَاَبَيْنَ اَنْ يَحْمِلْنَهَا وَاَشْفَقْنَ مِنْهَا وَحَمَلَهَا
الْاِنْسَانُ اِنَّهُ كَانَ ظَلُومًا جَهُولًا ﴿٧٢﴾ لِيُعَذِّبَ اللّٰهُ الْمُنَافِقِينَ
وَالْمُنَافِقَاتِ وَالْمُشْرِكِينَ وَالْمُشْرِكَاتِ وَيَتُوبَ اللّٰهُ عَلَى
الْمُؤْمِنِينَ وَالْمُؤْمِنَاتِ وَكَانَ اللّٰهُ غَفُورًا رَحِيمًا ﴿٧٣﴾



**63**- (Ya Muhemmed!) Însan pirsa qiyametê ji te dikin, ka kengê ye? Bibêje: Zanîna wê bes li cem Xwedê ye. Ma tu çi dizanî, dibe ku qiyamet nêzîk be jî.

**64**- Bêguman Xwedê Teala, lanet li kafiran barandiye û ji wan re agirekî bipêt amade kiriye.

**65**- Ew ê her û her di wî agirê bipêt de bimînin, ew dê ji bo xwe ne dostekî ne jî arîkarekî bibînin.

**66**- Roja ku rûyên wan di êgir de têne wergerandin, dê bibêjin: Hey wax li me be! Xwezika me bi gotina Xwedê û bi gotina Pêxember kiribûya!

**67**- Ew peyrew dibêjin: Xwedayê me! Me bi gotina serdar û mezinên xwe kir û wan jî em ji rê derxistin.

**68**- Xwedayê me! Du qatî (yê me) ezab bide wan û bi laneteke mezin wan lanet bike.

**69**- Gelî yên ku bawerî anîne! Hûn jî (li hember Pêxemberê xwe) nebin wek wan ên ku wan Mûsa êşandiye! Vêca Xwedê Mûsa ji ya ku digotin pak û paqij kir. Mûsa li cem Xwedê (pêxemberekî) bisiyanet û rûmetdar e.

**70**- Gelî yên ku bawerî anîne! Xwe ji (bêemriya) Xwedê biparêzin û gotina rast û durist bibêjin.

**71**- Xwedê dê kar û barên we li hev bîne û li gunehên we bibore. Kî bi gotina Xwedê û Pêxemberê wî bike, wî serkeftineke mezin bi dest xistiye.

**72**- Me emanetê xwe li asîmanan, li erdê û çiyan derpêş kir, wan xwe neda ber hilgirtina wî (spareyî) û (ji berpirsiya wî) tirsiyan, lê belê însên ew hilgirt; bêguman însan sitemkar e, nezan e.

**73**- (Xwedê ev emanet da însên) da ku Xwedê zilamên munafiq û pîrekên munafiq, zilamên pûtperest û pîrekên pûtperest bide ezab û da ku Xwedê tobeya zilamên bawermend û pîrekên bawermend qebûl bike. Xwedê her gunehjêbir e, dilovîn e.

سُورَةُ سَبَاٍ مَكِّيَّةٌ وَهِيَ
اَرْبَعٌ وَخَمْسُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
اَلْحَمْدُ لِلّٰهِ الَّذ۪ي لَهُ مَا فِي السَّمٰوَاتِ وَمَا فِي الْاَرْضِ وَلَهُ الْحَمْدُ
فِي الْاٰخِرَةِ وَهُوَ الْحَك۪يمُ الْخَب۪يرُ ﴿١﴾ يَعْلَمُ مَا يَلِجُ فِي الْاَرْضِ
وَمَا يَخْرُجُ مِنْهَا وَمَا يَنْزِلُ مِنَ السَّمَٓاءِ وَمَا يَعْرُجُ ف۪يهَا وَهُوَ
الرَّح۪يمُ الْغَفُورُ ﴿٢﴾ وَقَالَ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا لَا تَأْت۪ينَا السَّاعَةُ
قُلْ بَلٰى وَرَبّ۪ي لَتَأْتِيَنَّكُمْ عَالِمِ الْغَيْبِ لَا يَعْزُبُ عَنْهُ مِثْقَالُ
ذَرَّةٍ فِي السَّمٰوَاتِ وَلَا فِي الْاَرْضِ وَلَٓا اَصْغَرُ مِنْ ذٰلِكَ وَلَٓا اَكْبَرُ
اِلَّا ف۪ي كِتَابٍ مُب۪ينٍ ﴿٣﴾ لِيَجْزِيَ الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ
اُو۬لٰٓئِكَ لَهُمْ مَغْفِرَةٌ وَرِزْقٌ كَر۪يمٌ ﴿٤﴾ وَالَّذ۪ينَ سَعَوْ ف۪ٓي اٰيَاتِنَا
مُعَاجِز۪ينَ اُو۬لٰٓئِكَ لَهُمْ عَذَابٌ مِنْ رِجْزٍ اَل۪يمٌ ﴿٥﴾ وَيَرَى الَّذ۪ينَ
اُو۫تُوا الْعِلْمَ الَّذ۪ٓي اُنْزِلَ اِلَيْكَ مِنْ رَبِّكَ هُوَ الْحَقَّ وَيَهْد۪ٓي اِلٰى
صِرَاطِ الْعَز۪يزِ الْحَم۪يدِ ﴿٦﴾ وَقَالَ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا هَلْ نَدُلُّكُمْ عَلٰى
رَجُلٍ يُنَبِّئُكُمْ اِذَا مُزِّقْتُمْ كُلَّ مُمَزَّقٍ اِنَّكُمْ لَف۪ي خَلْقٍ جَد۪يدٍ ﴿٧﴾

## SÛREYÊ SEBE

Sûreyê Sebe, 54 (pêncî û çar) ayet e. Li Mekkê daketiye. Sûre, navê xwe ji bêjeya Sebe girtiye ku ew di ayeta 15'em de derbas bûye û ew li Yemenê navê herêmekê ye. Sûreyê Sebe pir bi girîngî li ser mijara bîr û baweriyê: "Yekîtiya Xwedê, Pêxember, saxbûna piştî mirinê û li ser padaş û sezayê" radiweste. Sûre, pêşî pesnê Xwedê dide ku wî bi hikmet mexlûq çêkirine, kar û barê 'alemê li hev ragirtiye, gerdûn bi rêk û pêk kiriye û tiştek li asîmanan û erdê li ber veşartî namîne. Sûreyî, behsa qiseya hin Pêxemberan û bi taybetî jî behsa qiseya Nebî Dawud û kurê wî Nebî Suleyman (e) kiriye. Ew qenciya ku li wan kirî ragihandiye û daye zanîn ku ji Nebî Suleyman re ba berdest kiribû û ji Nebî Dawud re jî teyr û tûr û çiya misixur kiribûn. Bi vî awayî qenciya xwe ya li ser wan ji me re eşkere kiriye.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

1- Hemd (pesn û spasî) her ji Xwedê re ye. Ewê ku çiqas tiştên li erd û asîmanan hene her milkên wî ne û pesindariya axretê her jê re ye û ew di kar û barê xwe de xwedîhikmet e, agahdar e.

2- Ew dizane ya ku dikeve erdê û ya ku ji erdê derdikeve, ya ku ji esmên dakeve û ya ku hildikişe esmên. Ew, (ji bo bendeyên xwe) dilovîn e, gunehjêbir e.

3- Ew ên ku kafir bûne, gotin: Qiyamet bi ser me de nayê. Bibêje: Belê! Bi Xwedayê min, ewê ku zanayê nependîyê ye, sond be; misoger qiyamet her dê bi ser we de bê. Li erd û asîmanan bi qasî giraniya zereyekî jî tiştek ji ber wî winda nabe. Ya ku ji zereyê biçûktir û ya ku jê mezintir jî her ew di kitêbeke aşkera de (di Lewhul Mehfûzê de) ne.

4- (Belê, qiyamet dê were) da ku Xwedê ew ên ku wan bawerî aniye û karên qenc kirine, padaş bike. Ha ji bo wan lêborîn û rizqekî xweş heye.

5- Ew ên ku der barê (pûçkirina hukmê) ayetên me de pîkoliyê dikin, (guman dikin) ku ewê Xwedê naçar bihêlin. Ha ji bo wan jî ezabekî erjeng û xemnak heye.

6- (Ya Muhemmed!) Ew ên ku ilm û zanîn ji bo wan hatiye dayîn, ew baş dizanin ku ev Quran ji cem Xwedayê te hatiye hinartin, ew heq û rast e. Ew berê (mirovan) dide riya wî Xwedayê desthilat, hêjayî pesindayînê.

7- Ewên ku kafir bûne ji hev re wiha gotin: Ma em zilamekî wisa nîşanî we bidin ku ew ji we re bibêje; dema ku hûn ji hev parçe marçe bûn û ji hev pelişîn, hûn ê (piştî mirinê) dîsa ji nû ve rabin û sax bibin?!

اَفْتَرٰى عَلَى اللّٰهِ كَذِبًا اَمْ بِه۪ جِنَّةٌ بَلِ الَّذ۪ينَ لَا يُؤْمِنُونَ بِالْاٰخِرَةِ
فِى الْعَذَابِ وَالضَّلَالِ الْبَع۪يدِ ﴿٨﴾ اَفَلَمْ يَرَوْا اِلٰى مَا بَيْنَ اَيْد۪يهِمْ
وَمَا خَلْفَهُمْ مِنَ السَّمَاۤءِ وَالْاَرْضِ اِنْ نَشَاْ نَخْسِفْ بِهِمُ الْاَرْضَ
اَوْ نُسْقِطْ عَلَيْهِمْ كِسَفًا مِنَ السَّمَاۤءِ اِنَّ ف۪ى ذٰلِكَ لَاٰيَةً لِكُلِّ
عَبْدٍ مُن۪يبٍ ﴿٩﴾ وَلَقَدْ اٰتَيْنَا دَاوُ۫دَ مِنَّا فَضْلًا يَا جِبَالُ اَوِّب۪ى
مَعَهُ وَالطَّيْرَ وَاَلَنَّا لَهُ الْحَد۪يدَ ﴿١٠﴾ اَنِ اعْمَلْ سَابِغَاتٍ وَقَدِّرْ
فِى السَّرْدِ وَاعْمَلُوا صَالِحًا اِنّ۪ى بِمَا تَعْمَلُونَ بَص۪يرٌ ﴿١١﴾
وَلِسُلَيْمٰنَ الرّ۪يحَ غُدُوُّهَا شَهْرٌ وَرَوَاحُهَا شَهْرٌ وَاَسَلْنَا لَهُ
عَيْنَ الْقِطْرِ وَمِنَ الْجِنِّ مَنْ يَعْمَلُ بَيْنَ يَدَيْهِ بِاِذْنِ رَبِّه۪ وَمَنْ
يَزِغْ مِنْهُمْ عَنْ اَمْرِنَا نُذِقْهُ مِنْ عَذَابِ السَّع۪يرِ ﴿١٢﴾ يَعْمَلُونَ
لَهُ مَا يَشَاۤءُ مِنْ مَحَار۪يبَ وَتَمَاث۪يلَ وَجِفَانٍ كَالْجَوَابِ
وَقُدُورٍ رَاسِيَاتٍ اِعْمَلُوا اٰلَ دَاوُ۫دَ شُكْرًا وَقَل۪يلٌ مِنْ عِبَادِىَ
الشَّكُورُ ﴿١٣﴾ فَلَمَّا قَضَيْنَا عَلَيْهِ الْمَوْتَ مَا دَلَّهُمْ عَلٰى مَوْتِه۪ٓ
اِلَّا دَاۤبَّةُ الْاَرْضِ تَاْكُلُ مِنْسَاَتَهُ فَلَمَّا خَرَّ تَبَيَّنَتِ الْجِنُّ
اَنْ لَوْ كَانُوا يَعْلَمُونَ الْغَيْبَ مَا لَبِثُوا فِى الْعَذَابِ الْمُه۪ينِ ﴿١٤﴾

لَقَدْ

**8**- (Wan ji hev re got:) Ma gelo li ser navê Xwedê bi derewan bêbextiyê dike yan jî pê re dînîtî heye? Nexêr, belkî ew ên ku bi axiretê bawerî nayînin di nav ezab û rêşaşiyeke dûr de ne.

**9**- Erê ma ew kafir li erd û asîmanên ku li pêşî û paşiya wan e, namêzînin? Eger em bivên em ê wan di erdê de bixin xwarê, yan jî em ê ji esmên parçeyên êgir bi ser wan de berdin. Bêguman di vê de ji bo her evdê ku (li Xwedayê xwe) vegere, îbretek heye.

**10**- Sond be Me ji cem xwe qenciyek da Dawud û me got: Gelî çiya! Hûn digel firendeyan bi dengê wî re bixulxulînin û me jê re hesin nerm kir.

**11**- (Me ji malbata Dawud re got:) Zirxên fireh çêkin, fesala wan bi endaz bikin û karên hêja bikin, bêguman ez li ser ya ku hûn dikin bîner im.

**12**- Me ji Suleyaman re ba misuxir kiribû ku danê spêdeyê qûnaxa mehekê wî bibe û danê êvarê jî ku qûnaxa mehekê wî bînê, Me kaniya paxir jê re herikand û ji cinan jî yên ku li ber destê wî rêncberî dikir hebûn. Ji wan kî ji fermana me derketaya vêca me dê azara agirê sincirî pê bida tehmkirin.

**13**- Wan ji Suleyman re ji keleyan, peykeran, cifniyên mîna hewzan û dîzên (di erdê de) cihgirtî ya bivaya çêdikirin. (Me ji wan re got:) Gelî malbata Dawud! Xwedayê xwe bişêkirînin, teqez ji bendeyên min (ên) şukirdar kêm in!

**14**- Êdî dema me mirin ji bo Suleyaman vebirî, bes kurmikê ku gopalê wî dixwar mirina wî ravayî wan kir. Vêca dema ku ew kumişî ser erdê, ji cinan re diyar bû ku eger bi nependiyê bizanibûna, wî qasî di wê keftelefta riswaker de nediman.

لَقَدْ كَانَ لِسَبَإٍ فٖى مَسْكَنِهِمْ اٰيَةٌۚ جَنَّتَانِ عَنْ يَمٖينٍ وَشِمَالٍۜ
كُلُوا مِنْ رِزْقِ رَبِّكُمْ وَاشْكُرُوا لَهُۜ بَلْدَةٌ طَيِّبَةٌ وَرَبٌّ غَفُورٌ
١٥ فَاَعْرَضُوا فَاَرْسَلْنَا عَلَيْهِمْ سَيْلَ الْعَرِمِ وَبَدَّلْنَاهُمْ
بِجَنَّتَيْهِمْ جَنَّتَيْنِ ذَوَاتَيْ اُكُلٍ خَمْطٍ وَاَثْلٍ وَشَيْءٍ مِنْ سِدْرٍ
قَلٖيلٍ ١٦ ذٰلِكَ جَزَيْنَاهُمْ بِمَا كَفَرُواۜ وَهَلْ نُجَازٖٓى اِلَّا الْكَفُورَ
١٧ وَجَعَلْنَا بَيْنَهُمْ وَبَيْنَ الْقُرَى الَّتٖى بَارَكْنَا فٖيهَا قُرًى ظَاهِرَةً
وَقَدَّرْنَا فٖيهَا السَّيْرَۜ سٖيرُوا فٖيهَا لَيَالِيَ وَاَيَّامًا اٰمِنٖينَ ١٨
فَقَالُوا رَبَّنَا بَاعِدْ بَيْنَ اَسْفَارِنَا وَظَلَمُٓوا اَنْفُسَهُمْ فَجَعَلْنَاهُمْ
اَحَادٖيثَ وَمَزَّقْنَاهُمْ كُلَّ مُمَزَّقٍۜ اِنَّ فٖى ذٰلِكَ لَاٰيَاتٍ
لِكُلِّ صَبَّارٍ شَكُورٍ ١٩ وَلَقَدْ صَدَّقَ عَلَيْهِمْ اِبْلٖيسُ ظَنَّهُ
فَاتَّبَعُوهُ اِلَّا فَرٖيقًا مِنَ الْمُؤْمِنٖينَ ٢٠ وَمَا كَانَ لَهُ عَلَيْهِمْ
مِنْ سُلْطَانٍ اِلَّا لِنَعْلَمَ مَنْ يُؤْمِنُ بِالْاٰخِرَةِ مِمَّنْ هُوَ مِنْهَا
فٖى شَكٍّۜ وَرَبُّكَ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ حَفٖيظٌ ٢١ قُلِ ادْعُوا الَّذٖينَ
زَعَمْتُمْ مِنْ دُونِ اللّٰهِۚ لَا يَمْلِكُونَ مِثْقَالَ ذَرَّةٍ فِى السَّمٰوَاتِ
وَلَا فِى الْاَرْضِ وَمَا لَهُمْ فٖيهِمَا مِنْ شِرْكٍ وَمَا لَهُ مِنْهُمْ مِنْ ظَهٖيرٍ ٢٢

**15-** Sond be, di cih û warê gelê Sebeyê de nîşaneke mezin hebû, li rexê rastê du baxçe û li rexê çepê du baxçe hebûn. (Ji wan re hat gotin:) Ji rizqê Xwedayê xwe bixwin û şukira wî bikin. Ji bo we cihekî nîmetxweş û Xwedayekî xefûr heye.

**16-** Lê belê wan berê xwe (ji Xwedê û spasiya nîmetên wî) vegerandin. Ji bo vê (nankoriya wan) me jî şapeyeke dijwar bi ser wan de anî. Me her du baxçeyên wan bi du baxçeyên din guherandin ku xweyxwarinên tehl û hin dargez (kiferî) û tiştekî hindik jî ji darkinêrê bûn.

**17-** Ev e, bi sedema ku zêde înkarî kir me ew wisa dane cezadan û ji bilî yê mandelker em tu kesî (bi vî awayî) ceza nakin.

**18-** Me di navbera wan de û wan gundên ku me bereket xistibûyê, gelek gundên ji derveyî wan anîne holê û me di navbera wan de çend qonax danîn, (me ji wan re got:) De bi şev û roj hûn çawa dixwazin ji xwe re biewleyî bigerin.

**19-** Di pey vê de wan got: Xwedayê me! Navbera wan bajaran ên ku em bi rêwingî diçin, ji hev dûr bike. Wan (bi sebunet bêşêkirî û kufra xwe) li xwe zilim kirin. Vêca me ew kirin mijûlî (ya ser zimanê xelkê) û me ew ji hev belawela kirin. Bêguman di vê de ji bo her kesê sebirkêş û şukirdar, belge û nîşan hene.

**20-** Sond be, şeytan texmîna xwe ya di heqê wan (kafiran) de bi cih anî, vêca ji bilî bireke bawermend pê ve, tevekê wan dane pey wî.

**21-** Hal ev e ku tu pêkarîneke şeytên li ser wan tune bû, bes (me ev keys dayê) da ku em yên ku bawerî bi axretê tînin ji yên ku ew jê bişik in, nas bikin. Bêguman Xwedayê te li ser her tiştî parêzkar e.

**22-** Bibêje: Gazî wan ên ku di şûna Xwedê de we ew îlahên rastîn hizir dikirin, bikin (bila di hewara we bên). Ew li erd û asîmanan bi qasî giraniya zereyekê jî ne xwediyê tiştekî ne. Di wan de ji Xwedê re tu hevkar jî nîn in û ji wan, jê re tu piştek û arîkar jî nîn in.

وَلَا تَنْفَعُ الشَّفَاعَةُ عِنْدَهُٓ اِلَّا لِمَنْ اَذِنَ لَهُۜ حَتّٰٓى اِذَا فُزِّعَ
عَنْ قُلُوبِهِمْ قَالُوا مَاذَاۙ قَالَ رَبُّكُمْۜ قَالُوا الْحَقَّۚ وَهُوَ الْعَلِيُّ
الْكَبِيرُ ﴿٢٣﴾ قُلْ مَنْ يَرْزُقُكُمْ مِنَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ قُلِ
اللّٰهُۙ وَاِنَّٓا اَوْ اِيَّاكُمْ لَعَلٰى هُدًى اَوْ فِى ضَلَالٍ مُبِينٍ ﴿٢٤﴾
قُلْ لَا تُسْـَٔلُونَ عَمَّٓا اَجْرَمْنَا وَلَا نُسْـَٔلُ عَمَّا تَعْمَلُونَ ﴿٢٥﴾
قُلْ يَجْمَعُ بَيْنَنَا رَبُّنَا ثُمَّ يَفْتَحُ بَيْنَنَا بِالْحَقِّۜ وَهُوَ الْفَتَّاحُ
الْعَلِيمُ ﴿٢٦﴾ قُلْ اَرُونِىَ الَّذِينَ اَلْحَقْتُمْ بِهِ شُرَكَٓاءَ كَلَّاۜ
بَلْ هُوَ اللّٰهُ الْعَزِيزُ الْحَكِيمُ ﴿٢٧﴾ وَمَٓا اَرْسَلْنَاكَ اِلَّا
كَٓافَّةً لِلنَّاسِ بَشِيرًا وَنَذِيرًا وَلٰكِنَّ اَكْثَرَ النَّاسِ
لَا يَعْلَمُونَ ﴿٢٨﴾ وَيَقُولُونَ مَتٰى هٰذَا الْوَعْدُ اِنْ كُنْتُمْ صَادِقِينَ
﴿٢٩﴾ قُلْ لَكُمْ مِيعَادُ يَوْمٍ لَا تَسْتَاْخِرُونَ عَنْهُ سَاعَةً
وَلَا تَسْتَقْدِمُونَۚ ﴿٣٠﴾ وَقَالَ الَّذِينَ كَفَرُوا لَنْ نُؤْمِنَ بِهٰذَا الْقُرْاٰنِ
وَلَا بِالَّذِى بَيْنَ يَدَيْهِۜ وَلَوْ تَرٰٓى اِذِ الظَّالِمُونَ مَوْقُوفُونَ
عِنْدَ رَبِّهِمْۚ يَرْجِعُ بَعْضُهُمْ اِلٰى بَعْضٍ الْقَوْلَۚ يَقُولُ الَّذِينَ
اسْتُضْعِفُوا لِلَّذِينَ اسْتَكْبَرُوا لَوْلَٓا اَنْتُمْ لَكُنَّا مُؤْمِنِينَ ﴿٣١﴾

قَالَ

**23-** Şefaeta tu şefaetkarî li cem Xwedê feyde nade ji bilî yê ku Xwedê destûrê bidê. Piştî ku tirs ji dilên wan (şefaetkaran) çû; (ji firîşteyan re) dibêjin: Xwedayê we der barê şefaetê de çi got? (Firîşte) dibêjin: Rastî got. Her ew e yê bilind, yê mezin.

**24-** Bibêje: Ma kî ye yê ku ji erd û asîmanan rizq dide we? Bibêje: Xwedê ye! Nexwe em û hûn, yek ji me her du bereyan an li ser riya rast e yan jî di nava rêşaşiyeke aşkera de ye.

**25-** Bibêje: Hûn ji gunehên ku me kirin nayên pirsiyarkirin û em jî ji ya hûn dikin nayên pirsiyarkirin.

**26-** Bibêje: Xwedayê me dê (roja qiyametê) me û we li hev bicivîne, piştre dê di navbera me de bi edaletî hukim bike. Her ew e yê ku heq û neheqan ji hev cuda dike û her ew e yê bi her tiştî dizane.

**27-** Bibêje: De ka ew (pût)ên ku di îbadetê de we ew ji Xwedê re kirine hevpişk nîşanî min bidin? Nexêr, ne wekî we hizir dikir! Belkî Xwedê ye yê (di kar û barê xwe de) deshilat, ê xweyhîkmet.

**28-** (Resûlê min!) Me tu ji tevekê însanan re bes mizgînber û hişyarker şandiye, lê belê pirên mirovan (bi vê) nizanin.

**29-** Kafir dibêjin: Eger hûn rast dibêjin, ew ezabê te peyman pê daye ka kengê tê cih?

**30-** Bibêje: Xwedê ji bo ezab rojek daniye. Hûn ne saetekê jê li paş dimînin ne jî saetekê hûn didin pêşiya wê.

**31-** Ew ên ku kafir bûne, gotin: Em ne ji vê Quranê bawer dikin û ne jî ji kitêbên beriya wê. Eeger te ew kafirên zalim li ber destê Xwedayê xwe rawestayî bidîta ku çawa ew li hev gotinan vedigerînin; ewên ku (li dinyayê) qels bûn, ji wan ên ku xwe mezin didêrana re dibêjin: Eger ne ji we bûya teqez em ê bawermend bûna.

قَالَ الَّذِينَ اسْتَكْبَرُوا لِلَّذِينَ اسْتُضْعِفُوا اَنَحْنُ صَدَدْنَاكُمْ
عَنِ الْهُدٰى بَعْدَ اِذْ جَاۤءَكُمْ بَلْ كُنْتُمْ مُجْرِمِينَ ﴿٣٢﴾ وَقَالَ الَّذِينَ
اسْتُضْعِفُوا لِلَّذِينَ اسْتَكْبَرُوا بَلْ مَكْرُ الَّيْلِ وَالنَّهَارِ اِذْ تَأْمُرُونَنَا
اَنْ نَكْفُرَ بِاللّٰهِ وَنَجْعَلَ لَهُ اَنْدَادًا وَاَسَرُّوا النَّدَامَةَ لَمَّا
رَاَوُا الْعَذَابَ وَجَعَلْنَا الْاَغْلَالَ فٖى اَعْنَاقِ الَّذِينَ كَفَرُوا
هَلْ يُجْزَوْنَ اِلَّا مَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿٣٣﴾ وَمَا اَرْسَلْنَا فٖى قَرْيَةٍ مِنْ
نَذٖيرٍ اِلَّا قَالَ مُتْرَفُوهَا اِنَّا بِمَا اُرْسِلْتُمْ بِهٖ كَافِرُونَ ﴿٣٤﴾ وَقَالُوا
نَحْنُ اَكْثَرُ اَمْوَالًا وَاَوْلَادًا وَمَا نَحْنُ بِمُعَذَّبٖينَ ﴿٣٥﴾ قُلْ اِنَّ
رَبّٖى يَبْسُطُ الرِّزْقَ لِمَنْ يَشَاۤءُ وَيَقْدِرُ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَ النَّاسِ
لَا يَعْلَمُونَ ﴿٣٦﴾ وَمَاۤ اَمْوَالُكُمْ وَلَاۤ اَوْلَادُكُمْ بِالَّتٖى تُقَرِّبُكُمْ
عِنْدَنَا زُلْفٰى اِلَّا مَنْ اٰمَنَ وَعَمِلَ صَالِحًا فَاُولٰۤئِكَ لَهُمْ جَزَاۤءُ
الضِّعْفِ بِمَا عَمِلُوا وَهُمْ فِى الْغُرُفَاتِ اٰمِنُونَ ﴿٣٧﴾ وَالَّذٖينَ
يَسْعَوْنَ فٖۤى اٰيَاتِنَا مُعَاجِزٖينَ اُولٰۤئِكَ فِى الْعَذَابِ مُحْضَرُونَ
﴿٣٨﴾ قُلْ اِنَّ رَبّٖى يَبْسُطُ الرِّزْقَ لِمَنْ يَشَاۤءُ مِنْ عِبَادِهٖ وَيَقْدِرُ
لَهُ وَمَاۤ اَنْفَقْتُمْ مِنْ شَىْءٍ فَهُوَ يُخْلِفُهُ وَهُوَ خَيْرُ الرَّازِقٖينَ ﴿٣٩﴾

**32**- Ew ên ku (li dinyayê) xwe mezin didêran ji yên qels re dibêjin: Piştî hîdayet ji we re hat, ma me hûn jê vegerand? Na, belkî hûn bi xwe gunehkar bûn.

**33**- (Li hemberî vê yekê) Ew ên ku qels bûn, ji yên xwemezindêr re wiha dibêjin: Na! Bi şev û roj karên we hîle û fend bû. Her tim we ferman li me dikir ku em Xwedê înkar bikin û jê re hevpişkan çêkin. Êdî peyrew û pêşrew piştî ku ezab dibînin, poşmaniya xwe (ya ku wan îman neaniye ji hev) vedişêrin. Em jî dê zincîran bixin stûyên wan ên ku kafir bûne, ew ji cezayê ya ku kirine pê ve nayêne cezakirin.

**34**- Çi welatekî ku Me pêxemberek şandibê, her maldar û serkarên wî digotin: Em bi emir û fermanên ku hûn pê hatine şandin bawerî nayînin.

**35**- Ev jî gotin: Em ji aliyê mal û zarokan ve (ji we) bêhtir in û em ne ew in ku bêne ezabdayîn.

**36**- Bibêje: Xwedayê min, kê bivê rizqê wî fireh dike û (kê jî bivê rizqê wî) teng dike, lê belê pirên mirovan (bi vê) nizanin.

**37**- Ne malên we ne jî zarokên we, we nêzîkî bal me ve nakin. Lê belê ew ên ku wan bawerî anî û karên qenc kirine, ew cuda ne. Vêca ha ew, bi sedema ya ku kirin, ji bo wan qat bi qat padaş heye. Ew li (bihiştê di) koşkên bilind de di nav (rihetî û) ewlehiyê de ne.

**38**- Ew ên ku der barê (pûçkirina hukmê) ayetên me de pîkoliyê dikin, (ji wan we ye ku ew ê) zora me bibin, ha ew dê rûbirûyî ezab bêne hiştin.

**39**- Bibêje: Bêguman Xwedayê min ji evdên xwe kê bivê rizqê wî fireh dike û (kê bivê jî rizqê wî) teng dike. Vêca hûn (ji bo Xwedê) çi xerc bikin, Xwedê dê xelefa wê vegerinê û her Xwedê ye çêtirînê rizqlidaran.

وَيَوْمَ يَحْشُرُهُمْ جَمِيعًا ثُمَّ يَقُولُ لِلْمَلٰٓئِكَةِ اَهٰٓؤُلَٓاءِ اِيَّاكُمْ
كَانُوا يَعْبُدُونَ ﴿٤٠﴾ قَالُوا سُبْحَانَكَ اَنْتَ وَلِيُّنَا مِنْ دُونِهِمْ بَلْ
كَانُوا يَعْبُدُونَ الْجِنَّ اَكْثَرُهُمْ بِهِمْ مُؤْمِنُونَ ﴿٤١﴾ فَالْيَوْمَ
لَا يَمْلِكُ بَعْضُكُمْ لِبَعْضٍ نَفْعًا وَلَا ضَرًّا وَنَقُولُ لِلَّذِينَ ظَلَمُوا
ذُوقُوا عَذَابَ النَّارِ الَّتِى كُنْتُمْ بِهَا تُكَذِّبُونَ ﴿٤٢﴾ وَاِذَا تُتْلٰى
عَلَيْهِمْ اٰيَاتُنَا بَيِّنَاتٍ قَالُوا مَا هٰذَٓا اِلَّا رَجُلٌ يُرِيدُ اَنْ يَصُدَّكُمْ
عَمَّا كَانَ يَعْبُدُ اٰبَٓاؤُكُمْ وَقَالُوا مَا هٰذَٓا اِلَّٓا اِفْكٌ مُفْتَرًى
وَقَالَ الَّذِينَ كَفَرُوا لِلْحَقِّ لَمَّا جَٓاءَهُمْ اِنْ هٰذَٓا اِلَّا سِحْرٌ مُبِينٌ
﴿٤٣﴾ وَمَٓا اٰتَيْنَاهُمْ مِنْ كُتُبٍ يَدْرُسُونَهَا وَمَٓا اَرْسَلْنَٓا اِلَيْهِمْ قَبْلَكَ
مِنْ نَذِيرٍ ﴿٤٤﴾ وَكَذَّبَ الَّذِينَ مِنْ قَبْلِهِمْ وَمَا بَلَغُوا مِعْشَارَ
مَٓا اٰتَيْنَاهُمْ فَكَذَّبُوا رُسُلِى فَكَيْفَ كَانَ نَكِيرِ ﴿٤٥﴾ قُلْ اِنَّمَٓا
اَعِظُكُمْ بِوَاحِدَةٍ اَنْ تَقُومُوا لِلّٰهِ مَثْنٰى وَفُرَادٰى ثُمَّ تَتَفَكَّرُوا مَا
بِصَاحِبِكُمْ مِنْ جِنَّةٍ اِنْ هُوَ اِلَّا نَذِيرٌ لَكُمْ بَيْنَ يَدَىْ عَذَابٍ شَدِيدٍ
﴿٤٦﴾ قُلْ مَا سَاَلْتُكُمْ مِنْ اَجْرٍ فَهُوَ لَكُمْ اِنْ اَجْرِىَ اِلَّا عَلَى اللّٰهِ وَهُوَ
عَلٰى كُلِّ شَىْءٍ شَهِيدٌ ﴿٤٧﴾ قُلْ اِنَّ رَبِّى يَقْذِفُ بِالْحَقِّ عَلَّامُ الْغُيُوبِ ﴿٤٨﴾

قُلْ

**40**- Wê roja ku Xwedê tevekê muşrikan li hev kom dike, paşê ji firîşteyan re dibêje; ma ev bûn yên ku ji we re îbadet dikirin?

**41**- Firîşte dê bibêjin: Tu pak û bilind î, dost û piştevanê me bes tu yî; ne ew in. (Wan perestina me nedikir), belkî perestina cinan (pelîdan) dikirin. Pirên wan bi cinan bawerî anîbû.

**42**- Vêca îro hûn nikarin tu feydê û tu xisarê bigihînin hev. Em ê ji wan ên ku zilim kirin re bibêjin: De heydê ezabê êgir biçêjin, ew ê ku (li dinyayê) we ew înkar dikir!

**43**- Dema ku ayetên me yên ronkar ji wan re dihatin xwendin, digotin: Ev bes şexsek e ku dixwaze we ji perestina wan (pûtan) vegerîne, ew ên ku bav û kalên we bi wan diperizîn. Digotin: Ev (Quran) jî bes derewek e ku wî ji cem xwe çêkiriye. Dema ku heq (Quran) ji wan re hat, ew ên kafir bûne gotin: Ev bes sêreke aşkera ye.

**44**-(Ya Muhemmed!) Me tu kitêb nedane wan ku ew wê bixwînin û me beriya te ji wan re tu pêxember jî neşandine.

**45**- Umetên beriya wan jî bawerî bi pêxemberên xwe neanîn. Ev (muşrikên Mekkê) nagihine dehyeka ya ku me (ji hêz û temen) daye wan. Vêca wan bi pêxemberên min bawerî neanî (û min ew birin helakê). Êdî binêre ka berteka (cezakirina) min li hemberî wan çawa bû (û min ew çawa birin helakê)?!

**46**- Bibêje: Ez bes yek şîretê li we dikim. Ji bo xatirê Xwedê du du û yeko yeko rabin rawestin, paşê baş bifikirin, (hûn ê bibînin ku) li dor hevalê we tu dînîtî tune ye. Ew her pêxemberek e, bi hatina ezabekî dijwar û xemnak we hişyar dike.

**47**- Bibêje: Min (li ser teblîxa îslamê) tu heqek ji we nexwestiye; vêca malê we yê we ye. Padaşa min her li Xwedê ye û ew li ser her tiştî şahid e.

**48**- Bibêje: Xwedayê min, heqiyê diavêje ser dilê pêxemberên xwe û Xwedê bi xeybê teqez agahdar e.

قُلْ جَاءَ الْحَقُّ وَمَا يُبْدِئُ الْبَاطِلُ وَمَا يُعِيدُ ﴿٤٩﴾ قُلْ اِنْ ضَلَلْتُ فَاِنَّمَا
اَضِلُّ عَلٰى نَفْسٖى وَاِنِ اهْتَدَيْتُ فَبِمَا يُوحٖى اِلَيَّ رَبّٖى اِنَّهُ سَمٖيعٌ قَرٖيبٌ
﴿٥٠﴾ وَلَوْ تَرٰى اِذْ فَزِعُوا فَلَا فَوْتَ وَاُخِذُوا مِنْ مَكَانٍ قَرٖيبٍ ﴿٥١﴾
وَقَالُوا اٰمَنَّا بِهٖ وَاَنّٰى لَهُمُ التَّنَاوُشُ مِنْ مَكَانٍ بَعٖيدٍ ﴿٥٢﴾ وَقَدْ كَفَرُوا بِهٖ
مِنْ قَبْلُ وَيَقْذِفُونَ بِالْغَيْبِ مِنْ مَكَانٍ بَعٖيدٍ ﴿٥٣﴾ وَحٖيلَ بَيْنَهُمْ وَبَيْنَ
مَا يَشْتَهُونَ كَمَا فُعِلَ بِاَشْيَاعِهِمْ مِنْ قَبْلُ اِنَّهُمْ كَانُوا فٖى شَكٍّ مُرٖيبٍ ﴿٥٤﴾




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحٖيمِ

اَلْحَمْدُ لِلّٰهِ فَاطِرِ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ جَاعِلِ الْمَلٰٓئِكَةِ رُسُلًا اُولٖٓى
اَجْنِحَةٍ مَثْنٰى وَثُلٰثَ وَرُبَاعَ يَزٖيدُ فِى الْخَلْقِ مَا يَشَٓاءُ اِنَّ اللّٰهَ عَلٰى
كُلِّ شَيْءٍ قَدٖيرٌ ﴿١﴾ مَا يَفْتَحِ اللّٰهُ لِلنَّاسِ مِنْ رَحْمَةٍ فَلَا مُمْسِكَ لَهَا
وَمَا يُمْسِكْ فَلَا مُرْسِلَ لَهُ مِنْ بَعْدِهٖ وَهُوَ الْعَزٖيزُ الْحَكٖيمُ ﴿٢﴾
يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ اذْكُرُوا نِعْمَتَ اللّٰهِ عَلَيْكُمْ هَلْ مِنْ خَالِقٍ غَيْرُ اللّٰهِ
يَرْزُقُكُمْ مِنَ السَّمَٓاءِ وَالْاَرْضِ لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَ فَاَنّٰى تُؤْفَكُونَ ﴿٣﴾

**49**- Bibêje: Heq (îslam) hat û êdî batil (bi her şekilê xwe) çû û ew bi tu awayan venagere.

**50**- Bibêje: Eger ez ji heqiyê şaş bibim, ez ê li hemberî xwe şaş bibim (zerara wê ji bo min e), eger ez riya rast bibînim, ev jî bi xêra vê (Quranê) ye ku Xwedayê min peyama wê daye min. Bêguman Xwedê bihîzer e, nêzîk e.

**51**- Eger rewşa kafiran, dema tirsê ew girtin te bidîta, vêca te didît ku tu cihê revê ji wan re tune ye û ew ji cihekî nêzîk ve hatine girtin.

**52**- (Piştî ku ezabê xwe dîtin) gotin: Me bawerî pê anî. Erê ma ew ê ji cihekî dûr ve ji ku bigihine tobe û baweriyê?

**53**- Hal ev e ku wan hê ji berê ve ew (pêxember) mandel kiribû û ji cihekî dûrî rastiyê dev diavêtin tiştên xeybî.

**54**- Êdî navbirek di navbera wan û ya ku dilê wan di çûyê de hatiye danîn. Eynî wekî ya ku berê bi yên mîna wan jî hatiye kirin. Bi rastî ew di nava şik û gumanê de bûn.

## SÛREYÊ FATIR

Sûreyê Fatir, 45 (çil û pênc) ayet e. Li Mekkê daketiye. Navê sûre ji ayeta 1'em tê ku kelîmeya Fatir tê de derbas bûye û ew bi mehneya Afirîner e yê ku bênimûne tişt îcad kirine.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

**1**- Pesnên rind û şukrên bêdawîn ji bo Xwedê ne, ew çêkerê erd û asîmanan e, firîşteyên xwedançeng, du çeng, sê çeng û çar çeng kirine qasid. Ew bi qasî ku bivê di afirandinê de zêde dike tiştê ku bivê dixuliqîne. Bêguman Xwedê li ser her tiştî qadir e.

**2**- Çi tiştê Xwedê ji dilovaniya xwe bide mirovan, vêca tu kesê ku wê ji wan bigire tune ye. Ya ku Xwedê wê bigire, vêca piştî wî kes nikare wê ji wan re berde. Her Ew e yê di kar û barê xwe de desthilatê xweyhîkmet.

**3**- Gelî mirovan! Qenciya ku Xwedê li we kiriye bînin bîra xwe. Erê ma ji bilî Xwedê xaliqekî din heye ku ji erd û esmên rizqê we bide? Ji bilî Xwedê tu me'bûdê bi rastî nîn e. Vêca çawa hûn berê xwe jê vedigerînin?

وَاِنْ يُكَذِّبُوكَ فَقَدْ كُذِّبَتْ رُسُلٌ مِنْ قَبْلِكَ وَاِلَى اللّٰهِ تُرْجَعُ
الْاُمُورُ ﴿٤﴾ يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ اِنَّ وَعْدَ اللّٰهِ حَقٌّ فَلَا تَغُرَّنَّكُمُ الْحَيٰوةُ
الدُّنْيَا وَلَا يَغُرَّنَّكُمْ بِاللّٰهِ الْغَرُورُ ﴿٥﴾ اِنَّ الشَّيْطَانَ لَكُمْ عَدُوٌّ
فَاتَّخِذُوهُ عَدُوًّا اِنَّمَا يَدْعُوا حِزْبَهُ لِيَكُونُوا مِنْ اَصْحَابِ السَّعٖيرِ
﴿٦﴾ اَلَّذٖينَ كَفَرُوا لَهُمْ عَذَابٌ شَدٖيدٌ وَالَّذٖينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا
الصَّالِحَاتِ لَهُمْ مَغْفِرَةٌ وَاَجْرٌ كَبٖيرٌ ﴿٧﴾ اَفَمَنْ زُيِّنَ لَهُ سُٓوءُ عَمَلِهٖ فَرَاٰهُ
حَسَنًا فَاِنَّ اللّٰهَ يُضِلُّ مَنْ يَشَٓاءُ وَيَهْدٖي مَنْ يَشَٓاءُ فَلَا تَذْهَبْ
نَفْسُكَ عَلَيْهِمْ حَسَرَاتٍ اِنَّ اللّٰهَ عَلٖيمٌ بِمَا يَصْنَعُونَ ﴿٨﴾ وَاللّٰهُ
الَّذٖٓي اَرْسَلَ الرِّيَاحَ فَتُثٖيرُ سَحَابًا فَسُقْنَاهُ اِلٰى بَلَدٍ مَيِّتٍ فَاَحْيَيْنَا
بِهِ الْاَرْضَ بَعْدَ مَوْتِهَا كَذٰلِكَ النُّشُورُ ﴿٩﴾ مَنْ كَانَ يُرٖيدُ الْعِزَّةَ فَلِلّٰهِ
الْعِزَّةُ جَمٖيعًا اِلَيْهِ يَصْعَدُ الْكَلِمُ الطَّيِّبُ وَالْعَمَلُ الصَّالِحُ يَرْفَعُهُ وَالَّذٖينَ
يَمْكُرُونَ السَّيِّئَاتِ لَهُمْ عَذَابٌ شَدٖيدٌ وَمَكْرُ اُولٰٓئِكَ هُوَ يَبُورُ
﴿١٠﴾ وَاللّٰهُ خَلَقَكُمْ مِنْ تُرَابٍ ثُمَّ مِنْ نُطْفَةٍ ثُمَّ جَعَلَكُمْ اَزْوَاجًا
وَمَا تَحْمِلُ مِنْ اُنْثٰى وَلَا تَضَعُ اِلَّا بِعِلْمِهٖ وَمَا يُعَمَّرُ مِنْ مُعَمَّرٍ
وَلَا يُنْقَصُ مِنْ عُمُرِهٖٓ اِلَّا فٖي كِتَابٍ اِنَّ ذٰلِكَ عَلَى اللّٰهِ يَسٖيرٌ ﴿١١﴾

وَمَا

**4**- (Ya Muhemmed!) Eger ew bi te bawerî nayînin, vêca bi rastî beriya te jî gelek pêxember bawerî bi wan nehatibû kirin û hemû kar û bar her dê bi bal Xwedê ve bêne vegerandin.

**5**- Gelî mirovan! Bêguman peymana Xwedê (ya der barê heşr û neşrê de, xelat û celatê de) heq e. Vêca zinhar bila jiyana cîhanê we nexapîne û bila pelîdê xapînok jî bi (efûkirina) Xwedê we nexapîne!

**6**- Bêguman pelîd ji we re neyar e. Nexwe hûn jî, wî ji xwe re neyar qebûl bikin (û li dûv neçin). Ew bes gazî hevalbendên xwe dike da ku ew bibin ji xelkên agirê bipêt.

**7**- Ew ên ku kafir bûne, ji wan re ezabekî dijwar heye, ew ên ku wan bawerî anî û karên qenc kirine, ji bo wan lêborîn û xelateke mezin heye.

**8**- Erê ma ew kesê ku karê wî yê pîs jê re were xemilandin, vêca ew jî wî karî qenc bibîne (ma dibe mîna wî kesê qenciyê qenc û xerabiyê xerab bibîne)!? Birastî jî Xwedê kî (nebaşiyê) bivê wî ji rê dixe û kî jî (başiyê) bivê wî rasterê dike. Nexwe ji xema (bi sebunet kufra wan) xwe nebe helakê. Bêguman Xwedê bi ya ew dikin agahdar e.

**9**- Xwedê ye yê ku bayan dişîne û ewran dixe bizavê. Ha bi vî awayî em wan dişînin devera mirî (hişkbûyî) û piştî hişkbûna erdê Em dîsa wê hêşîn dikin. Her wisa em miriyan jî piştî mirinê sax dikin.

**10**- Kî ku şeref û rûmetê bixwaze, vêca izzet û rûmet tev ji cem Xwedê ne. Gotinên xweş û rind her bi bal wî ve bilind dibin û kar û barên qenc xwediyê xwe bilind dikin. Herçî ew ên ku fendên xerab dikin, ji bo wan ezabekî dijwar heye û fendên wan pûç dibin.

**11**- Xwedê hûn ji axê, paşê (hûn) ji dilopek av çêkirin, piştre hûn kirin hevser (jin û mêr). Tu mêyik ber nagire û berê xwe danayne ku ne bi zanîn û teqdîra Xweda be. Her candarekî ku temenê wî dirêj bibe yan jî kêm bibe, ew her di kitêbê (Lewhul Mehfûzê) de ye. Bêguman ev li cem Xwedê hêsan e.

وَمَا يَسْتَوِي الْبَحْرَانِ هٰذَا عَذْبٌ فُرَاتٌ سَائِغٌ شَرَابُهُ وَهٰذَا
مِلْحٌ اُجَاجٌ وَمِنْ كُلٍّ تَاْكُلُونَ لَحْمًا طَرِيًّا وَتَسْتَخْرِجُونَ
حِلْيَةً تَلْبَسُونَهَا وَتَرَى الْفُلْكَ فِيهِ مَوَاخِرَ لِتَبْتَغُوا مِنْ فَضْلِهِ
وَلَعَلَّكُمْ تَشْكُرُونَ ﴿١٢﴾ يُولِجُ الَّيْلَ فِي النَّهَارِ وَيُولِجُ النَّهَارَ
فِي الَّيْلِ وَسَخَّرَ الشَّمْسَ وَالْقَمَرَ كُلٌّ يَجْرِي لِاَجَلٍ مُسَمًّى
ذٰلِكُمُ اللّٰهُ رَبُّكُمْ لَهُ الْمُلْكُ وَالَّذِينَ تَدْعُونَ مِنْ دُونِهِ
مَا يَمْلِكُونَ مِنْ قِطْمِيرٍ ﴿١٣﴾ اِنْ تَدْعُوهُمْ لَا يَسْمَعُوا
دُعَاءَكُمْ وَلَوْ سَمِعُوا مَا اسْتَجَابُوا لَكُمْ وَيَوْمَ الْقِيٰمَةِ
يَكْفُرُونَ بِشِرْكِكُمْ وَلَا يُنَبِّئُكَ مِثْلُ خَبِيرٍ ﴿١٤﴾ يَا اَيُّهَا
النَّاسُ اَنْتُمُ الْفُقَرَاءُ اِلَى اللّٰهِ وَاللّٰهُ هُوَ الْغَنِيُّ الْحَمِيدُ ﴿١٥﴾
اِنْ يَشَاْ يُذْهِبْكُمْ وَيَاْتِ بِخَلْقٍ جَدِيدٍ ﴿١٦﴾ وَمَا ذٰلِكَ
عَلَى اللّٰهِ بِعَزِيزٍ ﴿١٧﴾ وَلَا تَزِرُ وَازِرَةٌ وِزْرَ اُخْرٰى وَاِنْ تَدْعُ
مُثْقَلَةٌ اِلٰى حِمْلِهَا لَا يُحْمَلْ مِنْهُ شَيْءٌ وَلَوْ كَانَ ذَا قُرْبٰى
اِنَّمَا تُنْذِرُ الَّذِينَ يَخْشَوْنَ رَبَّهُمْ بِالْغَيْبِ وَاَقَامُوا الصَّلٰوةَ
وَمَنْ تَزَكّٰى فَاِنَّمَا يَتَزَكّٰى لِنَفْسِهِ وَاِلَى اللّٰهِ الْمَصِيرُ ﴿١٨﴾

حزب ٤

12- Her du derya ne wek hev in. Ev a pir şêrîn e, têhnahiyê dibe, vexwarina wê hêsan e. Ev a ha jî pir şor e, tehl e û hûn ji tevan jî goştekî taze (masî) dixwin û xişrekî ku hûn li xwe dikin jê derdixin. Tu keştiyan dibînî ku behrê diqelêşin/digerin, da ku hûn ji qenciya Xwedê (li rizqê xwe) bigerin û (ji bo ku Xwedê ev qencî daye we hûn) şukrê wî bikin.

13- Xwedê şevê dixe ser rojê (rojê dirêj dike) û rojê jî dixe ser şevê (şevê dirêj dike), roj û heyv ji fermana xwe re stûxwar kirine. Her yek ji wan heya demeke navlêkirî dê di rêgeha xwe de bigerin. Ha (yê ku ev tev kirine) Xwedayê we Ellah Teala ye. Milk (û desthilatedarî) yê wî ye. Ew ên ku ji bilî Xwedê hûn perestina wan dikin, ew ne xwediyê qaşilka ser sîsikê ne jî.

14- Eger hûn gazî wan (pûtan) bikin, ew gaziya we nabihîzin. Eger ku ew (gaziya we) bibihîzin jî, lê ew nikarin bersiva we bidin. Roja qiyametê jî ew ê şirka we jî mandel bikin. Kes mîna wî Xwedayê ku bi her tiştî zana, te agahdar nake.

15- Gelî mirovan! Hûn hewceyî Xwedê ne. Xweda dewlemend û hêjayî pesindayînê ye.

16- Xwedê eger bivê dê we ji navê bibe û mexlûqekî din bîne şûna we.

17- Ev yek ji bo Xwedê helbet ne zehmet e.

18- Hîç tu kes gunehê tu kesê din hilnagire. Eger yekî gunehgiran gazî bike da ku gunehê wî hilgire, çendî ew lêzimê wî be jî, tiştek ji gunehên wî nayê hilgirtin. Bêguman bes tu wan ên ku di xeybê de ji Xwedayê xwe ditirsin û bi berdewamî nimêj dikin dikarî (bi vê Quranê) bitirsînî. Kî xwe (ji gunehên xwe) paqij bike, ew xwe tenê ji bo xwe paqij dike û domahîka hemû mexlûqan her bi bal Xwedê ve ye.

وَمَا يَسْتَوِي الْاَعْمٰى وَالْبَصِيرُ ﴿١٩﴾ وَلَا الظُّلُمَاتُ وَلَا النُّورُ
﴿٢٠﴾ وَلَا الظِّلُّ وَلَا الْحَرُورُ ﴿٢١﴾ وَمَا يَسْتَوِي الْاَحْيَاءُ وَلَا الْاَمْوَاتُ
اِنَّ اللّٰهَ يُسْمِعُ مَنْ يَشَاءُ وَمَا اَنْتَ بِمُسْمِعٍ مَنْ فِي الْقُبُورِ ﴿٢٢﴾
اِنْ اَنْتَ اِلَّا نَذِيرٌ ﴿٢٣﴾ اِنَّا اَرْسَلْنَاكَ بِالْحَقِّ بَشِيرًا وَنَذِيرًا
وَاِنْ مِنْ اُمَّةٍ اِلَّا خَلَا فِيهَا نَذِيرٌ ﴿٢٤﴾ وَاِنْ يُكَذِّبُوكَ فَقَدْ
كَذَّبَ الَّذِينَ مِنْ قَبْلِهِمْ جَاءَتْهُمْ رُسُلُهُمْ بِالْبَيِّنَاتِ وَبِالزُّبُرِ
وَبِالْكِتَابِ الْمُنِيرِ ﴿٢٥﴾ ثُمَّ اَخَذْتُ الَّذِينَ كَفَرُوا فَكَيْفَ
كَانَ نَكِيرِ ﴿٢٦﴾ اَلَمْ تَرَ اَنَّ اللّٰهَ اَنْزَلَ مِنَ السَّمَاءِ مَاءً
فَاَخْرَجْنَا بِهِ ثَمَرَاتٍ مُخْتَلِفًا اَلْوَانُهَا وَمِنَ الْجِبَالِ جُدَدٌ
بِيضٌ وَحُمْرٌ مُخْتَلِفٌ اَلْوَانُهَا وَغَرَابِيبُ سُودٌ ﴿٢٧﴾ وَمِنَ
النَّاسِ وَالدَّوَابِّ وَالْاَنْعَامِ مُخْتَلِفٌ اَلْوَانُهُ كَذٰلِكَ اِنَّمَا
يَخْشَى اللّٰهَ مِنْ عِبَادِهِ الْعُلَمٰٓؤُا اِنَّ اللّٰهَ عَزِيزٌ غَفُورٌ ﴿٢٨﴾
اِنَّ الَّذِينَ يَتْلُونَ كِتَابَ اللّٰهِ وَاَقَامُوا الصَّلٰوةَ وَاَنْفَقُوا مِمَّا
رَزَقْنَاهُمْ سِرًّا وَعَلَانِيَةً يَرْجُونَ تِجَارَةً لَنْ تَبُورَ ﴿٢٩﴾ لِيُوَفِّيَهُمْ
اُجُورَهُمْ وَيَزِيدَهُمْ مِنْ فَضْلِهِ اِنَّهُ غَفُورٌ شَكُورٌ ﴿٣٠﴾

وَالَّذِى

**19-** Yê kor û yê biçav ne mîna hev in...

**20-** Tarîtî û ronahî...

**21-** Sî û germayî jî (wekhev nabin).

**22-** Yên sax û yên mirî ne wek hev in. Bêguman Xwedê kê bivê bi wî dide sehkirin. (Ya Muhemmed!) Teqez tu nikarî (heqiyê) bi miriyên di goran de bidî sehkirin.

**23-** Tu tenê hişyarkerek î.

**24-** Bêguman me tu mizgînber û hişyarker şandî, bi şandineke ne ji henek. Tu miletek tune ye ku pêxemberek ji bo wan nehatibe.

**25-** Eger ew bi te bawerî neyînin bêguman wan ên beriya wan jî bawerî neanîbû, digel ku (pêxemberên wan) mucîze, suhûf û kitêbên ronahîker ji wan re anîbûn.

**26-** Paşê ew ên ku kafir bûne, min ew bi ezab hingaftin, de ka binêre cezadana min çawan bû?

**27-** Erê ma tu nabînî ku Xwedê ji ewran avek barandiye, vêca me bi wê avê fêkiyên rengereng û di çiyan de jî rêkên spî, sor û reştarî ku rengên wan ne wek hev in, çêkirine.

**28-** Her wisa Me însan, dewar û terş (deve û pez) jî rengereng (afirandine). Ji bendeyên Xwedê bes yên alim ji Xwedê bi heqî ditirsin. Bêguman Xwedê desthilat û gunehjêbir e.

Zana ew kes e ku Xwedê tam nas bike, wî mezin bidêre û bizane ku ew li ser her tiştî qadir e. Ji ilmê jî meqsûd; ew ilm e ku digel wî îman jî hebe. Îbnu Kesîr gotiye: “Zanayên ku Xwedê nas dikin ew tam jê ditirsin. Lewra mirov li gorî dereca naskirina xwe a bi Xwedê ji Xwedê ditirse.

**29-** Bêguman ew ên ku kitêba Xwedê dixwînin, berdewamî nimêj dikin û ji rizqê ku me daye wan bi dizî û aşkera (di riya Xwedê de) xerc dikin, ew (ji Xwedayê xwe) bazirganiyeke bêxesar hêvî dikin.

**30-** (Ew vê dikin) da ku Xwedê xelata (reftarên) wan bide wan û ji qenciya xwe dê zêde jî bide wan. Bêguman Xwedê gunehjêbirê şukirdar e.

وَالَّذٖٓي اَوْحَيْنَٓا اِلَيْكَ مِنَ الْكِتَابِ هُوَ الْحَقُّ مُصَدِّقًا لِمَا
بَيْنَ يَدَيْهِؕ اِنَّ اللّٰهَ بِعِبَادِهٖ لَخَبٖيرٌ بَصٖيرٌ ﴿٣١﴾ ثُمَّ اَوْرَثْنَا
الْكِتَابَ الَّذٖينَ اصْطَفَيْنَا مِنْ عِبَادِنَاۚ فَمِنْهُمْ ظَالِمٌ لِنَفْسِهٖۚ
وَمِنْهُمْ مُقْتَصِدٌۚ وَمِنْهُمْ سَابِقٌ بِالْخَيْرَاتِ بِاِذْنِ اللّٰهِؕ ذٰلِكَ هُوَ
الْفَضْلُ الْكَبٖيرُؕ ﴿٣٢﴾ جَنَّاتُ عَدْنٍ يَدْخُلُونَهَا يُحَلَّوْنَ فٖيهَا
مِنْ اَسَاوِرَ مِنْ ذَهَبٍ وَلُؤْلُؤًاۚ وَلِبَاسُهُمْ فٖيهَا حَرٖيرٌ ﴿٣٣﴾
وَقَالُوا الْحَمْدُ لِلّٰهِ الَّذٖٓي اَذْهَبَ عَنَّا الْحَزَنَؕ اِنَّ رَبَّنَا لَغَفُورٌ
شَكُورٌۙ ﴿٣٤﴾ اَلَّذٖٓي اَحَلَّنَا دَارَ الْمُقَامَةِ مِنْ فَضْلِهٖۚ لَا يَمَسُّنَا
فٖيهَا نَصَبٌ وَلَا يَمَسُّنَا فٖيهَا لُغُوبٌ ﴿٣٥﴾ وَالَّذٖينَ كَفَرُوا
لَهُمْ نَارُ جَهَنَّمَۚ لَا يُقْضٰى عَلَيْهِمْ فَيَمُوتُوا وَلَا يُخَفَّفُ عَنْهُمْ
مِنْ عَذَابِهَاؕ كَذٰلِكَ نَجْزٖي كُلَّ كَفُورٍۚ ﴿٣٦﴾ وَهُمْ يَصْطَرِخُونَ
فٖيهَاۚ رَبَّنَٓا اَخْرِجْنَا نَعْمَلْ صَالِحًا غَيْرَ الَّذٖي كُنَّا نَعْمَلُؕ
اَوَلَمْ نُعَمِّرْكُمْ مَا يَتَذَكَّرُ فٖيهِ مَنْ تَذَكَّرَ وَجَٓاءَكُمُ النَّذٖيرُؕ
فَذُوقُوا فَمَا لِلظَّالِمٖينَ مِنْ نَصٖيرٍۚ ﴿٣٧﴾ اِنَّ اللّٰهَ عَالِمُ
غَيْبِ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِؕ اِنَّهُ عَلٖيمٌ بِذَاتِ الصُّدُورِ ﴿٣٨﴾

**31**-(Ya Muhemmed!) Ew a me ji bo te ji vê kitêbê hinartiye, ew heq e. Rastderêxê kitêbên beriya xwe ye. Bêguman Xwedê bi bendeyên xwe teqez agahdar e, bîner e.

**32**- Paşê me kitêb (Quran) daye wan ên ku me ew ji nava bendeyên xwe bijartine. Vêca hin ji wan hene ku neheqiyê li xwe dikin û hin ji wan di riya navîn de diçin û hin ji wan bi destûra Xwedê di qenciyan de pêşbaziyê dikin. Ha ev, kerema mezin e.

Yê ku neheqiyê li xwe dike; ewê ku di tetbîqkirina Qur'anê de qusûra wî heye. Yê mu'tedil; ew ê ku bi Qur'anê emel bike û di qenciyan de pêşbazî bike ku îslamê ji xelkê re bibêje û wan bîne rêya rast û durust.

**33**- (Ew kerema mezin) bihiştên Ednê ne ku diçinê, ew tê de bi bazinên zêrîn û morîkên neqişandî têne xemilandin û cilên wan jî tê de hevrîşim e.

**34**- Ew dibêjin: Hemd ji wî Xwedayî re be ku derd û kovan ji me birin. Bêguman Xwedayê me her gunehjêbirê şukirdar e.

**35**- Ew (Xwedayê ku) ji qenciya xwe em xistine mala lêmayîna bêdawîn. Tu zehmetî tê de nagihîje me û ne jî kerixandin.

**36**- Ew ên ku kafir bûne, ji wan re jî agirê dojehê heye. Hukmê mirinê li wan nayê birîn êdî ku ew bimirin (û ji ezab reha bibin), her wiha li ser wan ezabê dojehê jî hîç nayê sivikkirin. Bi vî awayî em her kafirî ceza dikin.

**37**- Ew (kafir) li dojehê dikine feryad û dibêjin: Xwedayê me! Me derîne, em ê karekî qenc bikin ku ji yê me (berê li dinyayê) dikir cuda. (Xweda ji wan re dibêje:) Ma me temenekî wisa nedabû we ku kesê bixwaze bifikire wê bifikire û di wî de şîret wergire? Ma (pêxemberê) hişyarker ji we re nehatibû? Nexwe ezab tehm bikin, îcar ji zaliman re tu arîkar jî tun in.

**38**- Bêguman Xwedê zanayê bi nependiya erdê û yê asîmanan e. Bêguman Ew bi ya di dilan de jî dizane.

هُوَ الَّذٖى جَعَلَكُمْ خَلَٓائِفَ فِى الْاَرْضِؕ فَمَنْ كَفَرَ فَعَلَيْهِ كُفْرُهُؕ
وَلَا يَزٖيدُ الْكَافِرٖينَ كُفْرُهُمْ عِنْدَ رَبِّهِمْ اِلَّا مَقْتًاۚ وَلَا يَزٖيدُ
الْكَافِرٖينَ كُفْرُهُمْ اِلَّا خَسَارًا ﴿٣٩﴾ قُلْ اَرَاَيْتُمْ شُرَكَٓاءَكُمُ
الَّذٖينَ تَدْعُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِؕ اَرُونٖى مَاذَا خَلَقُوا مِنَ الْاَرْضِ
اَمْ لَهُمْ شِرْكٌ فِى السَّمٰوَاتِۚ اَمْ اٰتَيْنَاهُمْ كِتَابًا فَهُمْ عَلٰى بَيِّنَتٍ مِنْهُۚ
بَلْ اِنْ يَعِدُ الظَّالِمُونَ بَعْضُهُمْ بَعْضًا اِلَّا غُرُورًا ﴿٤٠﴾ اِنَّ اللّٰهَ يُمْسِكُ
السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ اَنْ تَزُولَاۚ وَلَئِنْ زَالَتَٓا اِنْ اَمْسَكَهُمَا مِنْ اَحَدٍ
مِنْ بَعْدِهٖؕ اِنَّهُ كَانَ حَلٖيمًا غَفُورًا ﴿٤١﴾ وَاَقْسَمُوا بِاللّٰهِ جَهْدَ اَيْمَانِهِمْ
لَئِنْ جَٓاءَهُمْ نَذٖيرٌ لَيَكُونُنَّ اَهْدٰى مِنْ اِحْدَى الْاُمَمِۚ فَلَمَّا جَٓاءَهُمْ
نَذٖيرٌ مَا زَادَهُمْ اِلَّا نُفُورًاۙ ﴿٤٢﴾ اِسْتِكْبَارًا فِى الْاَرْضِ وَمَكْرَ
السَّيِّئِؕ وَلَا يَحٖيقُ الْمَكْرُ السَّيِّئُ اِلَّا بِاَهْلِهٖؕ فَهَلْ يَنْظُرُونَ اِلَّا
سُنَّتَ الْاَوَّلٖينَۚ فَلَنْ تَجِدَ لِسُنَّتِ اللّٰهِ تَبْدٖيلًاۚ وَلَنْ تَجِدَ لِسُنَّتِ اللّٰهِ
تَحْوٖيلًا ﴿٤٣﴾ اَوَلَمْ يَسٖيرُوا فِى الْاَرْضِ فَيَنْظُرُوا كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ
الَّذٖينَ مِنْ قَبْلِهِمْ وَكَانُٓوا اَشَدَّ مِنْهُمْ قُوَّةًؕ وَمَا كَانَ اللّٰهُ لِيُعْجِزَهُ
مِنْ شَيْءٍ فِى السَّمٰوَاتِ وَلَا فِى الْاَرْضِؕ اِنَّهُ كَانَ عَلٖيمًا قَدٖيرًا ﴿٤٤﴾

وَلَوْ

39- Xwedê ye yê ku li ser erdê hûn kirine şûngirên hev. Vêca kî kafir bibe webalê kafiriya wî jê re ye. Kufra kafiran li cem Xwedayê wan, ji hêrsê pê ve ew tiştekî din li wan zêde nake. Kufra kafiran ji ziyanê pê ve tiştekî din li wan zêde nake.

40- Bibêje: Ma we ew hevpişkên xwe dîtin ên ku we ji bilî Xwedê perestina wan dikir? De heydê nîşanî min bidin ka çi ji erdê afirandine? Yan ma di afirandina asîmanan de (ji Xwedê re) hevpariyeke wan heye? Yan jî me pirtûkek daye wan, vêca ji wê pirtûkê delîleke wan heye?!. Nexêr, ew zalim ji xapandinê pê ve tu peymanê nadin hev.

41- Bêguman Xwedê erd û asîmanan radigire ku nekevin û eger ku bikevin jî piştî wî kes nikare wan ragire. Bêguman Xwedê her berbihêr e, gunehjêbir e.

42- Wan kafirên (Mekkeyê) bi (navê) Xwedê sonda asê xwar ku eger pêxemberek ji wan re were, ew dê ji temamê umetan (cihû û filehan) bêhtir di riya rast de bin. Lê belê çi dema ku pêxember ji wan re hat, hatina wî ji bilî ku ew ji heqiyê dûr kirin pê ve tiştekî din li wan zêde nekir.

43- (Ev a ku kirin tiştek li wan zêde nekir, ji bilî ku) xwe li ser erdê qure kirin û dolabên pîs gerandin. Hal ev e ku dolabên pîs tenê xwediyê xwe dorpêç dike. Vêca bes ew çavnêriya fermana Xwedê dikin, ya ku li ser ên berê bi kar hatibû. Tu yê di ferman û adetên Xwedê de tu guhartinê nebînî û tu yê di fermana û adetên Xwedê de tu veguhastinê jî nebînî.

44- Ma ew li ser erdê nagerin, vêca bibînin ka encama wan (umet)ên beriya wan çawa bûye?! Ew ji wan her zêde xurttir bûn. Ne li asîmanan ne jî li erdê tu hêzek tune ye ku Xwedê neçar bihêle. Bêguman Xwedê, her zana ye, kara ye.

45- Eger Xwedê ji ber gunehên mirovan ew hemen ceza bikirana, dê li ser rûyê erdê tu zindiyek nehiştibûya. Lê belê Xwedê cezayê wan heya demeke navlêkirî dide paş. Vêca dema civanê wan bê, bêguman Xwedê bînerê bi evdên xwe ye.

## SÛREYÊ YASÎN

Sûreyê Yasîn, 83 (heştê û sê) ayet e. Li Mekkê nazil bûye. Sûre navê xwe ji ayeta 1'em girtiye. Sûreyê Yasîn, bi piranî li ser bawerîanîna bi saxbûna piştî mirinê û heşr û neşrê, qiseya xelkê wî gundî û delîlên ku yekîtiya Xwedê nîşan didin disekine.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

1- Yasîn.

2- Sond bi Qurana Hekîm (ayetên wê yên mikûm û birêkûpêk).

3- Bêguman Tu (ey Muhemmed) ji pêxemberan î.

4- Li ser riyeke rast û durist î.

5- (Ev Quran), ji cem Xwedayê ezîz ê dilovîn hatiye hinartin...

6- (Ji te re hatiye şandin) da ku tu qewmekî hişyar bikî ku bav û kalên wan nehatibûn hişyarkirin, vêca haya wan (ji îman û heqîqetê) nîn e.

7- Sond be, li ser pirên wan ezab pêwîst bûye, vêca ew bawerî nayînin.

8- Bêguman me qeyd û zincîr xistine stûyên wan, êdî ew qeyd gihîştine heya çeneya wan, vêca (ji ber qeyd û zincîran) serrakirî mane (û nikarin bitewin). Bêguman bes tu wan ên ku di xeybê de ji Xwedayê xwe ditirsin û bi awayê pêdivî nimêj dikin, dikarî (bi vê Quranê) bitirsînî.



وَلَوْ يُؤَاخِذُ اللّٰهُ النَّاسَ بِمَا كَسَبُوا مَا تَرَكَ عَلٰى ظَهْرِهَا مِنْ دَٓابَّةٍ وَلٰكِنْ
يُؤَخِّرُهُمْ اِلٰٓى اَجَلٍ مُسَمًّىۚ فَاِذَا جَٓاءَ اَجَلُهُمْ فَاِنَّ اللّٰهَ كَانَ بِعِبَادِه۪ بَص۪يرًا ﴿٤٥﴾

سُورَةُ يٰسٓ مَكِّيَّةٌ وَهِيَ
ثَلٰثٌ وَثَمَانُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ

يٰسٓ ﴿١﴾ وَالْقُرْاٰنِ الْحَك۪يمِ ﴿٢﴾ اِنَّكَ لَمِنَ الْمُرْسَل۪ينَ ﴿٣﴾ عَلٰى
صِرَاطٍ مُسْتَق۪يمٍ ﴿٤﴾ تَنْز۪يلَ الْعَز۪يزِ الرَّح۪يمِ ﴿٥﴾ لِتُنْذِرَ قَوْمًا
مَٓا اُنْذِرَ اٰبَٓاؤُ۬هُمْ فَهُمْ غَافِلُونَ ﴿٦﴾ لَقَدْ حَقَّ الْقَوْلُ عَلٰٓى
اَكْثَرِهِمْ فَهُمْ لَا يُؤْمِنُونَ ﴿٧﴾ اِنَّا جَعَلْنَا ف۪ٓي اَعْنَاقِهِمْ اَغْلَالًا
فَهِيَ اِلَى الْاَذْقَانِ فَهُمْ مُقْمَحُونَ ﴿٨﴾ وَجَعَلْنَا مِنْ بَيْنِ اَيْد۪يهِمْ
سَدًّا وَمِنْ خَلْفِهِمْ سَدًّا فَاَغْشَيْنَاهُمْ فَهُمْ لَا يُبْصِرُونَ ﴿٩﴾
وَسَوَٓاءٌ عَلَيْهِمْ ءَاَنْذَرْتَهُمْ اَمْ لَمْ تُنْذِرْهُمْ لَا يُؤْمِنُونَ ﴿١٠﴾
اِنَّمَا تُنْذِرُ مَنِ اتَّبَعَ الذِّكْرَ وَخَشِيَ الرَّحْمٰنَ بِالْغَيْبِۚ فَبَشِّرْهُ
بِمَغْفِرَةٍ وَاَجْرٍ كَر۪يمٍ ﴿١١﴾ اِنَّا نَحْنُ نُحْيِ الْمَوْتٰى وَنَكْتُبُ مَا
قَدَّمُوا وَاٰثَارَهُمْۜ وَكُلَّ شَيْءٍ اَحْصَيْنَاهُ ف۪ٓي اِمَامٍ مُب۪ينٍ ﴿١٢﴾

9- Me li pêşiya wan bendek û li pişt wan jî bendek daniye û me perdeyek xistiye ser çavên wan, êdî ew (heqiyê) nabînin.

10- Ji wan re wekhev e, çi tu wan (ji ezabê Xwedê) hişyar bikî, çi tu wan hişyar nekî, her ew bawerî nayînin.

11- Bêguman bes tu wî yê ku dide pey Quranê û di halê nependiyê de jî ji Xwedayê rehman bitirs e, dikarî (bi vê Quranê) hişyar bikî. Vêca tu mizgîna lêborîn û xelateke hêja bidê.

12- Bêguman bes em in ên miriyan sax dikin. Em kar û barên ku wan li pêşiya xwe şandine (axiretê) û berhemên ku li dûv xwe hiştine jî dinivîsin û her tişt di kitêbeke diyarker de (di Lewhul Mehfûzê de bi jimartin) nivîsandî ye?

وَاضْرِبْ لَهُمْ مَثَلًا اَصْحَابَ الْقَرْيَةِ اِذْ جَٓاءَهَا الْمُرْسَلُونَ
١٣ اِذْ اَرْسَلْنَٓا اِلَيْهِمُ اثْنَيْنِ فَكَذَّبُوهُمَا فَعَزَّزْنَا بِثَالِثٍ
فَقَالُٓوا اِنَّٓا اِلَيْكُمْ مُرْسَلُونَ ١٤ قَالُوا مَٓا اَنْتُمْ اِلَّا بَشَرٌ
مِثْلُنَا وَمَٓا اَنْزَلَ الرَّحْمٰنُ مِنْ شَيْءٍ اِنْ اَنْتُمْ اِلَّا تَكْذِبُونَ ١٥
قَالُوا رَبُّنَا يَعْلَمُ اِنَّٓا اِلَيْكُمْ لَمُرْسَلُونَ ١٦ وَمَا عَلَيْنَٓا اِلَّا
الْبَلَاغُ الْمُبِينُ ١٧ قَالُٓوا اِنَّا تَطَيَّرْنَا بِكُمْ لَئِنْ لَمْ تَنْتَهُوا
لَنَرْجُمَنَّكُمْ وَلَيَمَسَّنَّكُمْ مِنَّا عَذَابٌ اَلِيمٌ ١٨ قَالُوا طَٓائِرُكُمْ
مَعَكُمْ اَئِنْ ذُكِّرْتُمْ بَلْ اَنْتُمْ قَوْمٌ مُسْرِفُونَ ١٩ وَجَٓاءَ مِنْ
اَقْصَا الْمَدِينَةِ رَجُلٌ يَسْعٰى قَالَ يَا قَوْمِ اتَّبِعُوا الْمُرْسَلِينَ
٢٠ اتَّبِعُوا مَنْ لَا يَسْـَٔلُكُمْ اَجْرًا وَهُمْ مُهْتَدُونَ ٢١ وَمَا لِيَ
لَٓا اَعْبُدُ الَّذِي فَطَرَنِي وَاِلَيْهِ تُرْجَعُونَ ٢٢ ءَاَتَّخِذُ مِنْ دُونِهِٓ اٰلِهَةً
اِنْ يُرِدْنِ الرَّحْمٰنُ بِضُرٍّ لَا تُغْنِ عَنِّي شَفَاعَتُهُمْ شَيْـًٔا وَلَا
يُنْقِذُونِ ٢٣ اِنِّٓي اِذًا لَفِي ضَلَالٍ مُبِينٍ ٢٤ اِنِّٓي اٰمَنْتُ بِرَبِّكُمْ
فَاسْمَعُونِ ٢٥ قِيلَ ادْخُلِ الْجَنَّةَ قَالَ يَا لَيْتَ قَوْمِي
يَعْلَمُونَ ٢٦ بِمَا غَفَرَ لِي رَبِّي وَجَعَلَنِي مِنَ الْمُكْرَمِينَ ٢٧
وَمَٓا

**13**- Ji bo wan, mînaka xelkê wî bajarî bîne, wê dema pêxember ji wan re hatin şandin.

**14**- Wê dema ku me ji bo wan du pêxember şandin, vêca wan bawerî bi wan neanî. Me jî bi pêxemberê sêyem piştgiriya wan kir. Wan (her sê pêxemberan) bi hev re (ji wan re) got: Bêguman em qasidên Xwedê ne, ji bo we hatine şandin!

**15**- Gotin: Hûn bes mirovên mîna me ne. Xwedayê rehman ji bo me tiştek neşandiye. Bes hûn her derewan dikin.

**16**- (Pêxemberan) got: Xwedayê me dizane ku birastî em ji bo we bi pêxemberî hatine şandin.

**17**- Ji bilî teblîxa wehya ronak em bi tu tiştî ne berpirs in.

**18**- Gotin: Ji rûyê we de bêqudoşî bi ser me de hat. Sond be, eger hûn ji vê doza xwe venegerin em ê her we bi keviran birecimînin û ji cem me ve teqez îşkenceyeke erjeng dê bihingive we.

**19**- (Pêxemberan) Got: Bêqudoşiya we (ji ber kufra we) ligel we ye. Ew ne ji me ye, ji we ye. Erê ma ji bo ku şîret li we hatiye kirin (bêqudoşî bi ser we de hat)? Nexêr, ne wisan e! Belkî hûn miletekî ku zêde serxweveçûyî ne.

**20**- Di vê navê de, ji dûrî wî bajarî zilamek bi bez hat û got: Hey qewmê min! Bidin pey van pêxemberan!

**21**- Bidin pey van ên ku ji we tu mize (ucret) naxwazin, bêguman ew li ser rasteriyekê ne.

**22**- (Piştî zilêm ev wesiyet li wan kir, jê re gotin: Ma tu jî li ser dînê wan î? Ji wan re wiha bersiv da û) Got: Ma çi li min qewimîye ku ez îbadetê Xwedê nekim, ew ê ku ez xuliqandime û ew ê ku hûn ê bi bal ve bên vegerandin.

**23**- Erê ma ez ê ji bilî Ellah Teala (ji xwe re) xwedayekî din bigrim? Eger ew Xwedayê rehman, ji bo min zerarekê bixwaze mehdera wan (pûtên we) dê feydeya tiştekî nede min. Ew qet nikarin min (ji ezabê Xwedê) rizgar bikin.

**24**- (Eger ez ji bilî Xwedê bi tiştekî biperizim), wê çaxê teqez ez di rêşaşiyeke aşkera de me.

**25**- Bêguman min bawerî bi Xwedayê we anî. Nexwe li min guhdarî bikin (û bidin pey van pêxemberên Wî).

**26**- (Piştî vê axaftinê ew kuştin, vêca) jê re hat gotin: Têkeve bihiştê! (Piştî wî kerema Xwedayê xwe dît) Got: Xwezî gelê min jî ev bizaniya...

**27**- Bi ya ku Xwedayê min ez xefirandime û ez gerandime, ji yên ku qencî li wan bûye.

وَمَٓا اَنْزَلْنَا عَلٰى قَوْمِه۪ مِنْ بَعْدِه۪ مِنْ جُنْدٍ مِنَ السَّمَٓاءِ وَمَا كُنَّا
مُنْزِل۪ينَ ﴿٢٨﴾ اِنْ كَانَتْ اِلَّا صَيْحَةً وَاحِدَةً فَاِذَا هُمْ خَامِدُونَ
﴿٢٩﴾ يَا حَسْرَةً عَلَى الْعِبَادِۚ مَا يَأْت۪يهِمْ مِنْ رَسُولٍ اِلَّا كَانُوا
بِه۪ يَسْتَهْزِؤُ۫نَ ﴿٣٠﴾ اَلَمْ يَرَوْا كَمْ اَهْلَكْنَا قَبْلَهُمْ مِنَ الْقُرُونِ
اَنَّهُمْ اِلَيْهِمْ لَا يَرْجِعُونَ ﴿٣١﴾ وَاِنْ كُلٌّ لَمَّا جَم۪يعٌ لَدَيْنَا
مُحْضَرُونَ ﴿٣٢﴾ وَاٰيَةٌ لَهُمُ الْاَرْضُ الْمَيْتَةُۚ اَحْيَيْنَاهَا وَاَخْرَجْنَا
مِنْهَا حَبًّا فَمِنْهُ يَأْكُلُونَ ﴿٣٣﴾ وَجَعَلْنَا ف۪يهَا جَنَّاتٍ مِنْ
نَخ۪يلٍ وَاَعْنَابٍ وَفَجَّرْنَا ف۪يهَا مِنَ الْعُيُونِۙ ﴿٣٤﴾ لِيَأْكُلُوا مِنْ
ثَمَرِه۪ۙ وَمَا عَمِلَتْهُ اَيْد۪يهِمْۜ اَفَلَا يَشْكُرُونَ ﴿٣٥﴾ سُبْحَانَ الَّذ۪ي
خَلَقَ الْاَزْوَاجَ كُلَّهَا مِمَّا تُنْبِتُ الْاَرْضُ وَمِنْ اَنْفُسِهِمْ وَمِمَّا
لَا يَعْلَمُونَ ﴿٣٦﴾ وَاٰيَةٌ لَهُمُ الَّيْلُۚ نَسْلَخُ مِنْهُ النَّهَارَ فَاِذَا هُمْ
مُظْلِمُونَۙ ﴿٣٧﴾ وَالشَّمْسُ تَجْر۪ي لِمُسْتَقَرٍّ لَهَاۜ ذٰلِكَ تَقْد۪يرُ
الْعَز۪يزِ الْعَل۪يمِۜ ﴿٣٨﴾ وَالْقَمَرَ قَدَّرْنَاهُ مَنَازِلَ حَتّٰى عَادَ
كَالْعُرْجُونِ الْقَد۪يمِ ﴿٣٩﴾ لَا الشَّمْسُ يَنْبَغ۪ي لَهَٓا اَنْ تُدْرِكَ
الْقَمَرَ وَلَا الَّيْلُ سَابِقُ النَّهَارِۜ وَكُلٌّ ف۪ي فَلَكٍ يَسْبَحُونَ ﴿٤٠﴾

**28**- Me piştî (şehîdbûna) wî ji bo helaka gelê wî, ji esmên tu leşkerek danexistiye û em danaxin jî (lewra ew ne hêjayê wê ne jî).

**29**- Bes yek qîreke dijwar ew hingaftin, vêca di cih de temirîn (yanî bêdeng man û mirin)..

**30**- Hey wax li rewşa îbadan! Çiqas pêxemberek ji wan re hatiye, her wan tinaz pê kirine (û bûne sersebebê helaka xwe).

**31**- Ma ew nabînin ku Me beriya wan çend qewm birine helakê! Bêguman ew careke din li wan nezivirîne jî.

**32**- Helbet ew hemû (ji bo hesabê xwe) dê li hizûra me bêne komkirin.

**33**- Erda mirî (ya hişk û hola) ku em wê sax (û hêşîn) dikin û em jê heb û tene derdixin, vêca ew jê dixwin (û pê dijîn), ji bo wan nîşan û delîl e (ku Xwedê dikare ji goran jî miriyan sax rake).

**34**- Me tê de gelek baxçeyên xurma û rezên tirî danîne û me gelek kanî jê pijiiqandin û herikandin.

**35**- Da ku ew ji fêkiyên wan bixwin. Ew ne bi destên wan hatiye çêkirin (û ne keda wan bû). Erê ma hê jî şukrê Xwedê nakin?

**36**- Ew Xwedayê ku ji tiştên ku erd hêşîn dike û ji mirovan û ji mexlûqên ku hê jî însan rastiya wan nizane, her tişt cot (nêr û mê) afirandine, (ji her kêmasî û ji ya nehêja) pak û paqij e.

**37**- Şev jî ji bo wan nîşan û delîl e (li ser qudreta Xwedê Teala). Em rojê ji ser wê radikêşin, vêca di wê demê de ew di tariyê de dimînin.

**38**- Roj jî ji bo wan nîşan e, ew di rêgeha xwe de digere. Ha ev teqdîra Xwedayê desthilat ê zana ye.

**39**- Heyv jî ji bo wan nîşan û delîl e, Me ji bo heyvê jî hin qonax/ rêgeh terxan kirine, heyanî paşê ew wekî çiqlê dara xurmê xwar dibe (dibe hîlal) û vedigere.

**40**- Ne ji rojê re durist e ku bigihîje heyvê ne jî şev dikare bide pêşiya rojê. Her yek ji wan di rêgeh û çerxekê de melevanîyê dikin û çerx dibin.

وَاٰيَةٌ لَهُمْ اَنَّا حَمَلْنَا ذُرِّيَّتَهُمْ فِى الْفُلْكِ الْمَشْحُونِ ﴿٤١﴾ وَخَلَقْنَا
لَهُمْ مِنْ مِثْلِه۪ مَا يَرْكَبُونَ ﴿٤٢﴾ وَاِنْ نَشَاْ نُغْرِقْهُمْ فَلَا صَر۪يخَ
لَهُمْ وَلَا هُمْ يُنْقَذُونَ ﴿٤٣﴾ اِلَّا رَحْمَةً مِنَّا وَمَتَاعًا اِلٰى ح۪ينٍ
﴿٤٤﴾ وَاِذَا ق۪يلَ لَهُمُ اتَّقُوا مَا بَيْنَ اَيْد۪يكُمْ وَمَا خَلْفَكُمْ لَعَلَّكُمْ
تُرْحَمُونَ ﴿٤٥﴾ وَمَا تَأْت۪يهِمْ مِنْ اٰيَةٍ مِنْ اٰيَاتِ رَبِّهِمْ اِلَّا كَانُوا
عَنْهَا مُعْرِض۪ينَ ﴿٤٦﴾ وَاِذَا ق۪يلَ لَهُمْ اَنْفِقُوا مِمَّا رَزَقَكُمُ اللّٰهُ
قَالَ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا لِلَّذ۪ينَ اٰمَنُوا اَنُطْعِمُ مَنْ لَوْ يَشَٓاءُ اللّٰهُ
اَطْعَمَهُ اِنْ اَنْتُمْ اِلَّا ف۪ى ضَلَالٍ مُب۪ينٍ ﴿٤٧﴾ وَيَقُولُونَ مَتٰى هٰذَا
الْوَعْدُ اِنْ كُنْتُمْ صَادِق۪ينَ ﴿٤٨﴾ مَا يَنْظُرُونَ اِلَّا صَيْحَةً وَاحِدَةً
تَأْخُذُهُمْ وَهُمْ يَخِصِّمُونَ ﴿٤٩﴾ فَلَا يَسْتَط۪يعُونَ تَوْصِيَةً وَلَٓا اِلٰٓى
اَهْلِهِمْ يَرْجِعُونَ ﴿٥٠﴾ وَنُفِخَ فِى الصُّورِ فَاِذَا هُمْ مِنَ الْاَجْدَاثِ
اِلٰى رَبِّهِمْ يَنْسِلُونَ ﴿٥١﴾ قَالُوا يَا وَيْلَنَا مَنْ بَعَثَنَا مِنْ مَرْقَدِنَا
هٰذَا مَا وَعَدَ الرَّحْمٰنُ وَصَدَقَ الْمُرْسَلُونَ ﴿٥٢﴾ اِنْ كَانَتْ اِلَّا
صَيْحَةً وَاحِدَةً فَاِذَا هُمْ جَم۪يعٌ لَدَيْنَا مُحْضَرُونَ ﴿٥٣﴾ فَالْيَوْمَ
لَا تُظْلَمُ نَفْسٌ شَيْـًٔا وَلَا تُجْزَوْنَ اِلَّا مَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿٥٤﴾
اِنَّ

41- Ji bo wan nîşan û delîl e ku Me kinêsa mirovan di keştiya tije de hilgirtiye.

42- Me ji bo wan gelek tiştên wekî keştiyê ku ew lê siwar bibin çêkirin.

43- Eger em bixwazin (digel keştiyan jî) em ê wan binav bikin û bixeniqînin, wê çaxê ji wan re ne hawar dê hebe ne jî ew ê bêne rizgarkirin.

44- Ji bilî yên ku em ji cem xwe dilovanî û pêxweşbûnekê heta demeke navlêkirî bi wan bidin.

45- Dema ji wan re bê gotin; ji ezabê dinyayê û yê axiretê xwe (bi nekirina gunehan) biparêzin, da ku rehmet li we bê kirin (ew qet deng nabin xwe û li pêxemberê xwe guhdarî nakin).

46- Çiqas ayetek ji ayetên Xwedayê wan ji wan re hatiye her wan berê xwe jê guhatiye.

47- Dema ku ji wan re bê gotin; ji wî rizqê ku Xwedê Teala daye we di xêrê de xerc bikin; ew ên ku kafir bûne ji yên bawermend re dibêjin: Erê ma em ê xwarinê bidin wan ên ku Xwedê nexwestiye xwarinê bide wan? (Muşrik ji mumînan re dibêjin: Bi vê gotina xwe) bêguman hûn bes di rêşaşiyeke aşkera de ne.

48- Ew (kafir ji bawermendan re) dibêjin: Eger bi rastî hûn rastgo ne (ka bibêjin) ma ev peyman (bi hatina qiyametê û saxbûna piştî mirinê) kengê ye?

49- Ew tenê çavnêriya qîrekê dikin ku ji nişka ve ew wan bigire û bihingêve û ku ew hêj bi hev re di nîqaşê de ne.

50- Wê demê ew ne dikarin wesiyetekê bikin ne jî dikarin li malbatên xwe vegerin.

51- Di sûrê (boqê) de tê pifkirin, ha (tu dibînî ku wa ye) ew ji goran radibin, bi lez û bez têne hizûra Xwedayê xwe.

52- Ha wê çaxê (yên kafir) dibêjin; hey wax li halê me be! Kê ji tirbên me em vejandine? (Vêca bawermend ji wan re dibêjin:) Ev, ew e ya ku Xwedayê rehman soz pê dabû û pêxemberan jî jê rast xeber dabû!

53- Ev rûdan ji yek qîrekê pê ve nîn e, hema wê hingê ew hemû li hizûra me amade dibin.

54- Îro bi tu tiştî neheqî li tu kesî nayê kirin û ji bilî ya we kirî pê ve hûn nayêne cezakirin.

اِنَّ اَصْحَابَ الْجَنَّةِ الْيَوْمَ ف۪ي شُغُلٍ فَاكِهُونَ ﴿٥٥﴾ هُمْ
وَاَزْوَاجُهُمْ ف۪ي ظِلَالٍ عَلَى الْاَرَٓائِكِ مُتَّكِؤُ۫نَ ﴿٥٦﴾ لَهُمْ ف۪يهَا
فَاكِهَةٌ وَلَهُمْ مَا يَدَّعُونَ ﴿٥٧﴾ سَلَامٌ قَوْلًا مِنْ رَبٍّ رَح۪يمٍ
﴿٥٨﴾ وَامْتَازُوا الْيَوْمَ اَيُّهَا الْمُجْرِمُونَ ﴿٥٩﴾ اَلَمْ اَعْهَدْ اِلَيْكُمْ
يَا بَن۪ٓي اٰدَمَ اَنْ لَا تَعْبُدُوا الشَّيْطَانَ اِنَّهُ لَكُمْ عَدُوٌّ مُب۪ينٌ
﴿٦٠﴾ وَاَنِ اعْبُدُون۪ي هٰذَا صِرَاطٌ مُسْتَق۪يمٌ ﴿٦١﴾ وَلَقَدْ اَضَلَّ
مِنْكُمْ جِبِلًّا كَث۪يرًا اَفَلَمْ تَكُونُوا تَعْقِلُونَ ﴿٦٢﴾ هٰذِه۪ جَهَنَّمُ
الَّت۪ي كُنْتُمْ تُوعَدُونَ ﴿٦٣﴾ اِصْلَوْهَا الْيَوْمَ بِمَا كُنْتُمْ تَكْفُرُونَ
﴿٦٤﴾ اَلْيَوْمَ نَخْتِمُ عَلٰٓى اَفْوَاهِهِمْ وَتُكَلِّمُنَٓا اَيْد۪يهِمْ وَتَشْهَدُ
اَرْجُلُهُمْ بِمَا كَانُوا يَكْسِبُونَ ﴿٦٥﴾ وَلَوْ نَشَٓاءُ لَطَمَسْنَا عَلٰٓى
اَعْيُنِهِمْ فَاسْتَبَقُوا الصِّرَاطَ فَاَنّٰى يُبْصِرُونَ ﴿٦٦﴾ وَلَوْ نَشَٓاءُ
لَمَسَخْنَاهُمْ عَلٰى مَكَانَتِهِمْ فَمَا اسْتَطَاعُوا مُضِيًّا وَلَا يَرْجِعُونَ
﴿٦٧﴾ وَمَنْ نُعَمِّرْهُ نُنَكِّسْهُ فِي الْخَلْقِ اَفَلَا يَعْقِلُونَ ﴿٦٨﴾ وَمَا
عَلَّمْنَاهُ الشِّعْرَ وَمَا يَنْبَغ۪ي لَهُ اِنْ هُوَ اِلَّا ذِكْرٌ وَقُرْاٰنٌ مُب۪ينٌ ﴿٦٩﴾
لِيُنْذِرَ مَنْ كَانَ حَيًّا وَيَحِقَّ الْقَوْلُ عَلَى الْكَافِر۪ينَ ﴿٧٠﴾

55- Bêguman îro bihiştî bi dilxweşî di nav xweşiyan de mijûl in.

56- Ew û jinên xwe di binê siyan de li ser textan paldayî ne.

57- Tê de her texlît mêwe û çi tiştê ew bixwazin ji bo wan heye.

58- Ji cem Perwerdegarê dilovîn, ji wan re “silav” tê gotin.

59- Gelî gunehkaran! Îro (xwe bidin alî û ji bawermendan) veqetin.

60- Gelî zarokên Adem! Erê ma (bi navgîna pêxemberan) me qewîtî li we nekiribû ku hûn şeytên nehebînin (bi gotina wî mekin), bêguman ew ji bo we neyarekî aşkera ye!

61- (Ma me qewîtî nekiribû ku) hûn bes min bihebînin. Ha ev riya rast û durist e!?

62- Şeytan ji we, pir kes ji rê xistin. Erê ma hûn tênagihîjin (ku êdî hûn bi gotina wî nekin)?

63- (Ji wan re li axiretê wiha tê gotin:) Ha ev e, ew dojeha ku soza wê ji we re hatibû dayîn.

64- Ji ber kafiriya ku we dikir, îro de bikevinê!

65- Îro em ê devên wan mor bikin (da neşên biaxivin) û destên wan yê digel me biaxivin û lingên wan dê şadehiyê li ser wan bidin (ka çi kirine).

66- Eger me xwestibûya me dê çavên wan kor û hitim bikirina, vêca (bi wê korahiyê) dê her wekî caran bi lez û bez biketina ser rê, erê ma çawa ew ê rê bibînin?

67- Eger me xwestibûya me dê ew di cihê wan de biguharta (bikira beraz û meymûn), vêca wan dê nekaribûya bi pêş ve herin ne jî bi paş ve vegerin.

68- Çi kesê ku Em temenê wî dirêj bikin, em di nav xelkê de (ser û berê wî) diguherînin (êdî bêhêz û piştxûz dibe). Erê ma ew ji vê jî aqil nagirin?

69- Me şi’r fêrî Pêxember nekiriye û ev ne babetê wî ye jî. Ya ku me fêrî wî kiriye, bes haydarî û Qurana ronak e.

70- Da ku ew bi vê Quranê kesê zindî yên bibîr û bawer (ji ezabê Xwedê) hişyar bike û da ku li ser kafiran jî ezab misoger bibe.

اَوَلَمْ يَرَوْا اَنَّا خَلَقْنَا لَهُمْ مِمَّا عَمِلَتْ اَيْدٖينَٓا اَنْعَامًا فَهُمْ لَهَا
مَالِكُونَ ﴿٧١﴾ وَذَلَّلْنَاهَا لَهُمْ فَمِنْهَا رَكُوبُهُمْ وَمِنْهَا يَاْكُلُونَ ﴿٧٢﴾
وَلَهُمْ فٖيهَا مَنَافِعُ وَمَشَارِبُ اَفَلَا يَشْكُرُونَ ﴿٧٣﴾ وَاتَّخَذُوا مِنْ
دُونِ اللّٰهِ اٰلِهَةً لَعَلَّهُمْ يُنْصَرُونَ ﴿٧٤﴾ لَا يَسْتَطٖيعُونَ نَصْرَهُمْ وَهُمْ
لَهُمْ جُنْدٌ مُحْضَرُونَ ﴿٧٥﴾ فَلَا يَحْزُنْكَ قَوْلُهُمْ اِنَّا نَعْلَمُ مَا يُسِرُّونَ
وَمَا يُعْلِنُونَ ﴿٧٦﴾ اَوَلَمْ يَرَ الْاِنْسَانُ اَنَّا خَلَقْنَاهُ مِنْ نُطْفَةٍ فَاِذَا
هُوَ خَصٖيمٌ مُبٖينٌ ﴿٧٧﴾ وَضَرَبَ لَنَا مَثَلًا وَنَسِىَ خَلْقَهُ قَالَ مَنْ
يُحْيِ الْعِظَامَ وَهِىَ رَمٖيمٌ ﴿٧٨﴾ قُلْ يُحْيٖيهَا الَّذٖٓى اَنْشَاَهَٓا اَوَّلَ
مَرَّةٍ وَهُوَ بِكُلِّ خَلْقٍ عَلٖيمٌ ﴿٧٩﴾ اَلَّذٖى جَعَلَ لَكُمْ مِنَ الشَّجَرِ الْاَخْضَرِ
نَارًا فَاِذَٓا اَنْتُمْ مِنْهُ تُوقِدُونَ ﴿٨٠﴾ اَوَلَيْسَ الَّذٖى خَلَقَ السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضَ بِقَادِرٍ عَلٰٓى اَنْ يَخْلُقَ مِثْلَهُمْ بَلٰى وَهُوَ الْخَلَّاقُ الْعَلٖيمُ
﴿٨١﴾ اِنَّمَٓا اَمْرُهُٓ اِذَٓا اَرَادَ شَيْـًٔا اَنْ يَقُولَ لَهُ كُنْ فَيَكُونُ ﴿٨٢﴾
فَسُبْحَانَ الَّذٖى بِيَدِهٖ مَلَكُوتُ كُلِّ شَيْءٍ وَاِلَيْهِ تُرْجَعُونَ ﴿٨٣﴾




بِسْمِ اللّٰهِ

**71**- Erê ma ew kafir nabînin ku me ji karê destê xwe ji bo wan terş (deve, dewar û pez) afirandine, vêca ew ji wan re xwedî ne?!

**72**- Me ew terş ji wan re sernerm kirine, (xistine bin xizmeta wan), vêca hin ji wan siwareyên wan in û hin ji wan jî goştê wan dixwin.

**73**- Ji bo wan, di van de gelek berjewendî û gelek vexwarin hene. Erê ma hê jî ew şukrê (Xwedê) nakin?

**74**- Dîsa wan bi hêviya ku dê arîkariya wan bikin, ji bilî Xwedê Teala ji bo xwe hin me'bûd girtin.

**75**- Ew pût, hîç nikarin arîkariya wan bikin, lê belê ew bi xwe di xizmeta wan pûtan de amade ne.

**76**- (Ya Muhemmed!) Bila gotina wan (ya ku ji te re dibêjin, tu ne pêxember î ) te xemgîn neke. Bêguman Em bi ya ku ew vedişêrin û bi ya ku aşkera jî dikin, dizanin.

**77**- Ma însan nabîne ku me ew ji dilopek av afirandiye, lê tu dibînî wa ye ew bûye dijminekî aşkera.

**78**- Der heqê Me de derb û meseleyan li dar dixe û xulqiyeta xwe ji bîr kiriye, dibêje; ma kî yê vî hestiyê riziyayî sax bike?!

**79**- Bibêje: Ew Xwedayê ku cara pêşîn ji nebûnî afirandiye, dê wan sax jî bike. Ew li ser çêkirina her tiştî zana ye.

**80**- Ew Xweda ye, yê ku ji dara hêşîn ji we re agir deraniye, vêca hûn pê êgir vêdixin.

**81**- Erê ma ew ê ku erd û asîman (digel mezinatiya wan) afirandin, nikare yên mîna wan biafirîne? Belê, helbet dikare. Her Ew e yê xellaq, ê elîm.

**82**- Fermana Xwedê -dema ku ew tiştekî bixwaze- tenê ev e ku jê re bibêje "bibe." Vêca ew jî di cih de dibe.

**83**- Ew Xwedayê ku milk û hukimranîya her tiştî di destê wî de ye (ji her kêmasiyê) pak û paqij e û hûn ê her bi bal wî ve vegerin.

## SÛREYÊ SAFFAT

Sûreyê Saffat 182 (sed û heştê û du) ayet e. li Mekkê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de bêjeya Saffat derbas bûye û bi mehneya wan firîşteyan e ku sef girtine/vewestane.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

1- Sond bi wan firîşteyên ku rêz bi rêz sef girtine...

2- Sond bi wan firîşteyên ku (ewran) tînin cem hev û diajon...

3- Sond bi wan ên ku Quranê dixwînin...

4- Bêguman Xwedayê we her yek e.

5- Ew xwedayê erd û asîmanan, xwedayê çiqas tiştê di navbera wan de û xwedayê rojhilatan e.

6- Bêguman Me asîmanê cîhanê bi xweşikahiya stêran xemilandiye.

7- Me (bi stêran) asîman ji her pelîdê serhildêr parastiye.

8- Ew (pelîd) nikarin li civata bilind (a firîşteyan) guhdarî bikin û ji her aliyî ve (bi stêran) têne recimandin.

9- Da ku wan bi qewirînin. Ji bo wan ezabekî seraqetî heye.

10- Lê belê yê ku (ji gotinên firîşteyan) yekê hilîne jî, bizotên şewatok û qulker wî dişopînin.

11- Ji wan muşrikan bipirse! Ma çêkirina wan ji Xwedê re zor e, yan (ji bilî wan) çêkirina tiştên dîtir? Bêguman me ew ji heriyeke zeliqînok afirandine.

12- Belkî tu ji (înkarkirina) wan (a vê qudreta îlahî) şaş dimînî. Hal ev e ku ew tinazan (li te û Quranê) dikin.

13- Dema ku (bi Quranê) bêne şîretkirin jî, nafikirin û şîret nagirin.

14- Dema ku mucîzeyekê bibînin, tinazên xwe pê dikin.

15- Dibêjin: Ev, tenê sêrbaziyeke aşkera ye.

16- Erê dema em mirin, bûne ax û hestî, ma (dîsa) em ê bêne saxkirin?!



بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

وَالصَّٓافَّاتِ صَفًّا ﴿١﴾ فَالزَّاجِرَاتِ زَجْرًا ﴿٢﴾ فَالتَّالِيَاتِ ذِكْرًا ﴿٣﴾
اِنَّ اِلٰهَكُمْ لَوَاحِدٌ ﴿٤﴾ رَبُّ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَمَا بَيْنَهُمَا وَرَبُّ
الْمَشَارِقِ ﴿٥﴾ اِنَّا زَيَّنَّا السَّمَٓاءَ الدُّنْيَا بِزِينَةٍ الْكَوَاكِبِ ﴿٦﴾ وَحِفْظًا
مِنْ كُلِّ شَيْطَانٍ مَارِدٍ ﴿٧﴾ لَا يَسَّمَّعُونَ اِلَى الْمَلَاِ الْاَعْلٰى وَيُقْذَفُونَ
مِنْ كُلِّ جَانِبٍ ﴿٨﴾ دُحُورًا وَلَهُمْ عَذَابٌ وَاصِبٌ ﴿٩﴾ اِلَّا مَنْ
خَطِفَ الْخَطْفَةَ فَاَتْبَعَهُ شِهَابٌ ثَاقِبٌ ﴿١٠﴾ فَاسْتَفْتِهِمْ اَهُمْ اَشَدُّ خَلْقًا
اَمْ مَنْ خَلَقْنَا اِنَّا خَلَقْنَاهُمْ مِنْ طِينٍ لَازِبٍ ﴿١١﴾ بَلْ عَجِبْتَ وَيَسْخَرُونَ
﴿١٢﴾ وَاِذَا ذُكِّرُوا لَا يَذْكُرُونَ ﴿١٣﴾ وَاِذَا رَاَوْا اٰيَةً يَسْتَسْخِرُونَ ﴿١٤﴾ وَقَالُوا
اِنْ هٰذَٓا اِلَّا سِحْرٌ مُبِينٌ ﴿١٥﴾ ءَاِذَا مِتْنَا وَكُنَّا تُرَابًا وَعِظَامًا ءَاِنَّا
لَمَبْعُوثُونَ ﴿١٦﴾ اَوَ اٰبَٓاؤُنَا الْاَوَّلُونَ ﴿١٧﴾ قُلْ نَعَمْ وَاَنْتُمْ دَاخِرُونَ ﴿١٨﴾
فَاِنَّمَا هِيَ زَجْرَةٌ وَاحِدَةٌ فَاِذَا هُمْ يَنْظُرُونَ ﴿١٩﴾ وَقَالُوا يَا وَيْلَنَا هٰذَا
يَوْمُ الدِّينِ ﴿٢٠﴾ هٰذَا يَوْمُ الْفَصْلِ الَّذ۪ي كُنْتُمْ بِه۪ تُكَذِّبُونَ ﴿٢١﴾ اُحْشُرُوا
الَّذ۪ينَ ظَلَمُوا وَاَزْوَاجَهُمْ وَمَا كَانُوا يَعْبُدُونَ ﴿٢٢﴾ مِنْ دُونِ اللّٰهِ
فَاهْدُوهُمْ اِلٰى صِرَاطِ الْجَح۪يمِ ﴿٢٣﴾ وَقِفُوهُمْ اِنَّهُمْ مَسْؤُ۫لُونَ ﴿٢٤﴾

17- Erê ma bavên me yên pêşîn jî?

18- Bibêje: Belê (hûnê bêne saxkirin), hem jî hûn ê şerpeze û reben (bêne saxkirin).

19- Ew (saxkirin) tenê yek qîrek e, ji nişka ve ew (li ya ku were serê wan) dinêrin.

20- Kafir dibêjin: Hey wax li me! Ev roja hesab û cezayê ye.

21- Ha ev, roja hukimbirînê ye, ya ku we bawerî pê nedianî.

22- ( Xwedê li firîşteyan ferman dike:) Ew ên ku sitemkarî kirin û hevalên wan û ew (pût)ên ku bi wan diperestin, li hev bicivînin...

23- (Ew pûtên ku) di şûna Xwedê de (bi wan diperestin). Vêca berê wan bidin rêka dojehê.

24- Her wiha wan (sitemkaran) bigirin, bêguman ew dê (ji hemû gunehên xwe) bêne pirsyarkirin.

مَا لَكُمْ لَا تَنَاصَرُونَ ﴿٢٥﴾ بَلْ هُمُ الْيَوْمَ مُسْتَسْلِمُونَ ﴿٢٦﴾ وَاَقْبَلَ
بَعْضُهُمْ عَلٰى بَعْضٍ يَتَسَاۤءَلُونَ ﴿٢٧﴾ قَالُوا اِنَّكُمْ كُنْتُمْ تَأْتُونَنَا عَنِ
الْيَمِينِ ﴿٢٨﴾ قَالُوا بَلْ لَمْ تَكُونُوا مُؤْمِنِينَ ﴿٢٩﴾ وَمَا كَانَ لَنَا عَلَيْكُمْ
مِنْ سُلْطَانٍ بَلْ كُنْتُمْ قَوْمًا طَاغِينَ ﴿٣٠﴾ فَحَقَّ عَلَيْنَا قَوْلُ رَبِّنَا
اِنَّا لَذَاۤئِقُونَ ﴿٣١﴾ فَاَغْوَيْنَاكُمْ اِنَّا كُنَّا غَاوِينَ ﴿٣٢﴾ فَاِنَّهُمْ يَوْمَئِذٍ
فِى الْعَذَابِ مُشْتَرِكُونَ ﴿٣٣﴾ اِنَّا كَذٰلِكَ نَفْعَلُ بِالْمُجْرِمِينَ ﴿٣٤﴾
اِنَّهُمْ كَانُوا اِذَا قِيلَ لَهُمْ لَاۤ اِلٰهَ اِلَّا اللّٰهُ يَسْتَكْبِرُونَ ﴿٣٥﴾ وَيَقُولُونَ
اَئِنَّا لَتَارِكُوا اٰلِهَتِنَا لِشَاعِرٍ مَجْنُونٍ ﴿٣٦﴾ بَلْ جَاۤءَ بِالْحَقِّ وَصَدَّقَ
الْمُرْسَلِينَ ﴿٣٧﴾ اِنَّكُمْ لَذَاۤئِقُوا الْعَذَابِ الْاَلِيمِ ﴿٣٨﴾ وَمَا تُجْزَوْنَ
اِلَّا مَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿٣٩﴾ اِلَّا عِبَادَ اللّٰهِ الْمُخْلَصِينَ ﴿٤٠﴾ اُولٰۤئِكَ لَهُمْ
رِزْقٌ مَعْلُومٌ ﴿٤١﴾ فَوَاكِهُ وَهُمْ مُكْرَمُونَ ﴿٤٢﴾ فِى جَنَّاتِ النَّعِيمِ ﴿٤٣﴾
عَلٰى سُرُرٍ مُتَقَابِلِينَ ﴿٤٤﴾ يُطَافُ عَلَيْهِمْ بِكَأْسٍ مِنْ مَعِينٍ ﴿٤٥﴾ بَيْضَاۤءَ
لَذَّةٍ لِلشَّارِبِينَ ﴿٤٦﴾ لَا فِيهَا غَوْلٌ وَلَا هُمْ عَنْهَا يُنْزَفُونَ ﴿٤٧﴾ وَعِنْدَهُمْ
قَاصِرَاتُ الطَّرْفِ عِينٌ ﴿٤٨﴾ كَاَنَّهُنَّ بَيْضٌ مَكْنُونٌ ﴿٤٩﴾ فَاَقْبَلَ بَعْضُهُمْ
عَلٰى بَعْضٍ يَتَسَاۤءَلُونَ ﴿٥٠﴾ قَالَ قَاۤئِلٌ مِنْهُمْ اِنِّى كَانَ لِى قَرِينٌ ﴿٥١﴾

يَقُولُ

25- (Ji wan re tê gotin:) Erê ma çi ji we bûye ku hûn arîkariya hev nakin?

26- (Dê ji wan re bê gotin:) Naxêr ew nikarin! Ew îro (bi rebenî) radest bûne.

27- (Dema ku ew dikevin vê rewşê) Hin ji wan berê xwe didin hinekan û hev sûcdar dikin.

28- (Peyrew ji pêşrewan re wiha) Dibêjin: Hûn dihatin bêre me ji dîn (û heqiyê) vedigerand.

29- (Pêşrew jî ji peyrewan re wiha) Dibêjin: Na, ne wisa ye; belkî we bawerî neanîbû...

30- Tu hêza me ya ku em zorê li we bikin jî nebû. Lê belê hûn bi xwe (wekî me) civateke jirêderketî bûn.

31- Vêca ezabê Xwedayê me li ser me û li ser we pêwîst bû. Em ê jî (cezayê ku me heqkirî) tehm bikin.

32- Vêca me hûn ji rê xistin, lewra em bi xwe jî di rêşaşiyê de bûn.

33- Bêguman wê rojê di ezabê de ew hevpar in.

34- Ha em bi vî awayî li gunehkaran dikin.

35- Dema ku ji wan re hat gotin: "Ji Ellah Teala pê ve tu Xweda nîn e" wan xwe mezin didêran.

36- Digotin: Erê ma em ê ji bo şairekî dîn dev ji îlahên xwe berdin?

37- Nexêr, ev ne rast e. Muhemmed, rastî aniye û pêxember(ên beriya xwe) jî rast dêrane.

38- Hûn ê (bi sedema kufra xwe) ezabê dijwar tehm bikin.

39- Ne ji bo tiştekî din, tenê hûn dê bi ya ku we kiriye bêne cezakirin.

40- (Ji vî ezabî) tenê evdên Xwedê yên muxlis dê mu'af bêne girtin.

41- Ha ew, ji bo wan rizqekî aşkera û vebirî heye.

42- Hemû texlîtên fêkiyan dixwin û ew hatine qedirgirtin.

43- Di bihiştên xwedînîmet de...

44- Li ser textan, li pêşberî hev rûniştî ne.

45- Ji kaniyên herek kasên meyê ji wan re tên gerandin.

46- Şerabeke spî ye, lezetê dide vexweran.

47- Ne tê de sersemkirin heye ne jî pê serxweş dibin.

48- Li cem wan, jinên çavrind û mezin hene ku tenê li wan dinêrin.

49- Her wekî ku ew, hêkên veşartî yên destlênedayî bin.

50- Ha wê çaxê, hin xelkê bihiştê, berê xwe didin hinan (û halê hev ê dinyayê) ji hev dipirsin.

51- Ji nav wan yek dibêje: Bêguman hevalekî min hebû...

**52**- (Ji tinaz ve) digot: Erê ma tu jî ji wan î ew ên ku bi saxbûna piştî mirinê bawerî tînin?

**53**- Erê ma dema ku em bibin ax û hestî (rast e ku em ê dîsa sax bibin û) bêne cezakirin?

**54**- (Wî ji bihiştiyan re) got: Ka hûn jî çavê xwe bi min re li dojehê bigerînin.

**55**- Vêca wî çavê xwe li dojehê gerand, îcar wî (hevalê xwe) di nîvê dojehê de dît.

**56**- Jê re got: Ez bi Xwedê bikim, hindik mabû tu min jî ji rê bibî.

**57**- Eger ne qenciya Xwedayê min bûya, teqez ez jî dibûm ji dojehiyan.

**58**-(Dojehî ji hevalê bihiştî re got:) Erê ma vêca em hew dimirin?

**59**- (Cennetiyan got:) Em ji mirina xwe ya pêşîn pê ve namirin û em nayêne ezabdayîn.

**60**- Bêguman ev a ha, her ew e rizgariya mezin.

**61**- Ji bo serfiraziyeke welê bila yên karker kar bikin.

**62**- (Xwedê Teala dibêje:) Ma ji aliyê mêvandarî ve ev nîmetên me gotî çêtir in yan jî dara rûlê (zeqûmê)?

**63**- Me dara rûlê ji zaliman re kiriye îmtihan û ceribandin.

**64**- Bêguman ew dareke welê ye ku ji binê dojehê hêşîn dibe.

**65**- Fêkiyên wê, her wekî ku ew serên şeytanan e.

**66**- Bêguman (dojehî) jê dixwin, vêca ew zikên xwe ji wê tijî dikin.

**67**- Piştre bi ser xwarina zeqûmê de ji wan re vexwarineke (ji edab û xwînê) têkilhev heye.

**68**- Paşê vegera wan bi bal dojehê ve ye.

**69**- Bêguman wan bav û kalên xwe di nava rêşaşiyê de dîtin.

٤٤٩ الجزء الثالث والعشرون

يَقُولُ اَئِنَّكَ لَمِنَ الْمُصَدِّقِينَ ﴿٥٢﴾ ءَاِذَا مِتْنَا وَكُنَّا تُرَابًا وَعِظَامًا
ءَاِنَّا لَمَدِينُونَ ﴿٥٣﴾ قَالَ هَلْ اَنْتُمْ مُطَّلِعُونَ ﴿٥٤﴾ فَاطَّلَعَ فَرَاٰهُ
فِي سَوَٓاءِ الْجَحِيمِ ﴿٥٥﴾ قَالَ تَاللّٰهِ اِنْ كِدْتَ لَتُرْدِينِ
﴿٥٦﴾ وَلَوْلَا نِعْمَةُ رَبِّي لَكُنْتُ مِنَ الْمُحْضَرِينَ ﴿٥٧﴾ اَفَمَا نَحْنُ
بِمَيِّتِينَ ﴿٥٨﴾ اِلَّا مَوْتَتَنَا الْاُولٰى وَمَا نَحْنُ بِمُعَذَّبِينَ ﴿٥٩﴾ اِنَّ هٰذَا
لَهُوَ الْفَوْزُ الْعَظِيمُ ﴿٦٠﴾ لِمِثْلِ هٰذَا فَلْيَعْمَلِ الْعَامِلُونَ ﴿٦١﴾ اَذٰلِكَ
خَيْرٌ نُزُلًا اَمْ شَجَرَةُ الزَّقُّومِ ﴿٦٢﴾ اِنَّا جَعَلْنَاهَا فِتْنَةً لِلظَّالِمِينَ
﴿٦٣﴾ اِنَّهَا شَجَرَةٌ تَخْرُجُ فِي اَصْلِ الْجَحِيمِ ﴿٦٤﴾ طَلْعُهَا كَاَنَّهُ
رُؤُسُ الشَّيَاطِينِ ﴿٦٥﴾ فَاِنَّهُمْ لَاٰكِلُونَ مِنْهَا فَمَالِؤُنَ مِنْهَا
الْبُطُونَ ﴿٦٦﴾ ثُمَّ اِنَّ لَهُمْ عَلَيْهَا لَشَوْبًا مِنْ حَمِيمٍ ﴿٦٧﴾ ثُمَّ اِنَّ
مَرْجِعَهُمْ لَاِلَى الْجَحِيمِ ﴿٦٨﴾ اِنَّهُمْ اَلْفَوْا اٰبَٓاءَهُمْ ضَٓالِّينَ ﴿٦٩﴾
فَهُمْ عَلٰٓى اٰثَارِهِمْ يُهْرَعُونَ ﴿٧٠﴾ وَلَقَدْ ضَلَّ قَبْلَهُمْ اَكْثَرُ الْاَوَّلِينَ
﴿٧١﴾ وَلَقَدْ اَرْسَلْنَا فِيهِمْ مُنْذِرِينَ ﴿٧٢﴾ فَانْظُرْ كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ
الْمُنْذَرِينَ ﴿٧٣﴾ اِلَّا عِبَادَ اللّٰهِ الْمُخْلَصِينَ ﴿٧٤﴾ وَلَقَدْ نَادٰينَا نُوحٌ
فَلَنِعْمَ الْمُجِيبُونَ ﴿٧٥﴾ وَنَجَّيْنَاهُ وَاَهْلَهُ مِنَ الْكَرْبِ الْعَظِيمِ ﴿٧٦﴾

**70**- Vêca wan jî di şopa bav û kalên xwe de dilezand.

**71**- Sond be, (resûlê min!) qewmên berê jî mîna qewmê te, wan rê winda kiribû.

**72**- Bi sond, me ji nav wan, ji wan re pêxember şandin ku wan hişyar bikin.

**73**- De binêre, ka encama wan ên hatine hişyarkirin çawa bûye?!

**74**- Ji bilî bendeyên Xwedê yên dilsafî (yên ku bawerî anî).

**75**- Sond be, Nûh hawara xwe gihand me, vêca em çi xweş bersivdar in.

**76**- Me Nûh û malbata wî ji tengasiya mezin xelas kirin.

وَجَعَلْنَا ذُرِّيَّتَهُ هُمُ الْبَاقِينَ ﴿٧٧﴾ وَتَرَكْنَا عَلَيْهِ فِي الْاٰخِرِينَ ﴿٧٨﴾
سَلَامٌ عَلٰى نُوحٍ فِي الْعَالَمِينَ ﴿٧٩﴾ اِنَّا كَذٰلِكَ نَجْزِي الْمُحْسِنِينَ
﴿٨٠﴾ اِنَّهُ مِنْ عِبَادِنَا الْمُؤْمِنِينَ ﴿٨١﴾ ثُمَّ اَغْرَقْنَا الْاٰخَرِينَ ﴿٨٢﴾
وَاِنَّ مِنْ شِيعَتِهِ لَاِبْرٰهِيمَ ﴿٨٣﴾ اِذْ جَاءَ رَبَّهُ بِقَلْبٍ سَلِيمٍ ﴿٨٤﴾
اِذْ قَالَ لِاَبِيهِ وَقَوْمِهِ مَاذَا تَعْبُدُونَ ﴿٨٥﴾ اَئِفْكًا اٰلِهَةً دُونَ اللّٰهِ
تُرِيدُونَ ﴿٨٦﴾ فَمَا ظَنُّكُمْ بِرَبِّ الْعَالَمِينَ ﴿٨٧﴾ فَنَظَرَ نَظْرَةً فِي النُّجُومِ
﴿٨٨﴾ فَقَالَ اِنِّي سَقِيمٌ ﴿٨٩﴾ فَتَوَلَّوْا عَنْهُ مُدْبِرِينَ ﴿٩٠﴾ فَرَاغَ اِلٰٓى اٰلِهَتِهِمْ
فَقَالَ اَلَا تَاْكُلُونَ ﴿٩١﴾ مَا لَكُمْ لَا تَنْطِقُونَ ﴿٩٢﴾ فَرَاغَ عَلَيْهِمْ ضَرْبًا
بِالْيَمِينِ ﴿٩٣﴾ فَاَقْبَلُوا اِلَيْهِ يَزِفُّونَ ﴿٩٤﴾ قَالَ اَتَعْبُدُونَ مَا تَنْحِتُونَ ﴿٩٥﴾
وَاللّٰهُ خَلَقَكُمْ وَمَا تَعْمَلُونَ ﴿٩٦﴾ قَالُوا ابْنُوا لَهُ بُنْيَانًا فَاَلْقُوهُ
فِي الْجَحِيمِ ﴿٩٧﴾ فَاَرَادُوا بِهِ كَيْدًا فَجَعَلْنَاهُمُ الْاَسْفَلِينَ ﴿٩٨﴾ وَقَالَ
اِنِّي ذَاهِبٌ اِلٰى رَبِّي سَيَهْدِينِ ﴿٩٩﴾ رَبِّ هَبْ لِي مِنَ الصَّالِحِينَ ﴿١٠٠﴾
فَبَشَّرْنَاهُ بِغُلَامٍ حَلِيمٍ ﴿١٠١﴾ فَلَمَّا بَلَغَ مَعَهُ السَّعْيَ قَالَ يَا بُنَيَّ اِنِّي
اَرٰى فِي الْمَنَامِ اَنِّي اَذْبَحُكَ فَانْظُرْ مَاذَا تَرٰى قَالَ يَٓا اَبَتِ
افْعَلْ مَا تُؤْمَرُ سَتَجِدُنِي اِنْ شَاءَ اللّٰهُ مِنَ الصَّابِرِينَ ﴿١٠٢﴾

فَلَمَّا

**77**- Me tenê zuriyeta wî li ser rûyê erde hêla.

**78**- Me di nav wan de yên ku di pişt wî re tên, navê wî bi qencî hêla.

**79**- (Me) di nav temamê alemê de (got; ji cem me ve) Silav li Nûh be!

**80**- Bêguman em bi vî awayî qencîkarên rast û durist xelat dikin.

**81**- Bêguman Nûh, ji bendeyên me yên bawermend bû.

**82**- Paşê me ew ên din (yên ku bawerî neanîbû) binav kirin û xeniqandin.

**83**- Bêguman Îbrahîm jî, ji wan bû yên ku li ser rêk û rêbaza Nûh çûbûn.

**84**- Wê demê (Îbrahîm) bi dilekî pak û saf hate cem Xwedayê xwe...

**85**- Wê dema ku ji bavê xwe û gelê xwe re got: Hûn îbadetê çi dikin?

**86**- Ma ji bilî Ellah Teala hûn seneman dihebînin (ku hûn derewan dikin ew îlah in)?

**87**- Nexwe der barê Perwedegarê alemê de hizr û dîtina we çi ye?

**88**- Vêca Îbrahîm berê xwe da stêran.

**89**- (Ji wan re) Got: Ez nexweş im (ez nikarim bi we re derkevim cejnê).

**90**- Vêca pişta xwe dane Îbrahîm û çûn.

**91**- Îcar (Îbrahîm) bi dizîka berê xwe da bal pûtên wan û ji wan re got: Erê ma çima hûn xwarinê naxwin?!

**92**- Ma ji bo çi hûn napeyivin?

**93**- Bi ser pûtan ve çû û bi destê xwe yê rastê û bihêz ew şikandin.

**94**- (Gava pûtperestan dît ku pûtên wan hatine şikandin) Bi bez ber bi Îbrahim ve çûn (û gotin; te ji bo çi pûtên me şikandin?)

**95**- Îbrahîm got: Ma hûn perestina tiştên ku we ew çêkirine, dikin?

**96**- Her Xwedê hûn afirandine û ew pûtên ku hûn çêdikin jî.

**97**- (Pûtperestan ji hev re) Got: Ji bo wî avahiyekê saz bikin û di cih de wî di êgir werkin!

**98**- Vêca wan xwest Îbrahîm bişewitînin, lê belê me ew di bin xistin.

**99**- Îbrahîm got: Ez diçim bal Xwedayê xwe ve, ewê min rasterê bike.

**100**- Got: Xwedayê min! Zarokekî qencîkar bide min.

**101**- Vêca me mizgîna kurekî mulayîm û îtaetkar da Îbrahîm.

**102**- Dema kurê wî gihîşte wî çaxê ku bi bavê xwe re bigere û digel wî kar bike, Îbrahîm jê re wiha got: Kurê min! Min di xewnê de dîtiye ku min tu şerjê dikir. Vêca tu çi dibejî? wî jî bersiv da û jê re got: Bavo fermana ku li te hatiye kirin, wê bi cih bîne. Xwedê hez bike tu dê min ji sebirkêşan bibînî.

فَلَمَّٓا اَسْلَمَا وَتَلَّهُ لِلْجَب۪ينِۚ ﴿١٠٣﴾ وَنَادَيْنَاهُ اَنْ يَٓا اِبْرٰه۪يمُۙ
﴿١٠٤﴾ قَدْ صَدَّقْتَ الرُّءْيَاۚ اِنَّا كَذٰلِكَ نَجْزِي الْمُحْسِن۪ينَ
﴿١٠٥﴾ اِنَّ هٰذَا لَهُوَ الْبَلٰٓؤُا الْمُب۪ينُ ﴿١٠٦﴾ وَفَدَيْنَاهُ بِذِبْحٍ عَظ۪يمٍ ﴿١٠٧﴾
وَتَرَكْنَا عَلَيْهِ فِي الْاٰخِر۪ينَ ﴿١٠٨﴾ سَلَامٌ عَلٰٓى اِبْرٰه۪يمَ ﴿١٠٩﴾
كَذٰلِكَ نَجْزِي الْمُحْسِن۪ينَ ﴿١١٠﴾ اِنَّهُ مِنْ عِبَادِنَا الْمُؤْمِن۪ينَ ﴿١١١﴾
وَبَشَّرْنَاهُ بِاِسْحٰقَ نَبِيًّا مِنَ الصَّالِح۪ينَ ﴿١١٢﴾ وَبَارَكْنَا عَلَيْهِ
وَعَلٰٓى اِسْحٰقَۜ وَمِنْ ذُرِّيَّتِهِمَا مُحْسِنٌ وَظَالِمٌ لِنَفْسِه۪ مُب۪ينٌ ﴿١١٣﴾
وَلَقَدْ مَنَنَّا عَلٰى مُوسٰى وَهٰرُونَۚ ﴿١١٤﴾ وَنَجَّيْنَاهُمَا وَقَوْمَهُمَا
مِنَ الْكَرْبِ الْعَظ۪يمِۚ ﴿١١٥﴾ وَنَصَرْنَاهُمْ فَكَانُوا هُمُ الْغَالِب۪ينَۚ
﴿١١٦﴾ وَاٰتَيْنَاهُمَا الْكِتَابَ الْمُسْتَب۪ينَۚ ﴿١١٧﴾ وَهَدَيْنَاهُمَا الصِّرَاطَ
الْمُسْتَق۪يمَۚ ﴿١١٨﴾ وَتَرَكْنَا عَلَيْهِمَا فِي الْاٰخِر۪ينَ ﴿١١٩﴾ سَلَامٌ
عَلٰى مُوسٰى وَهٰرُونَ ﴿١٢٠﴾ اِنَّا كَذٰلِكَ نَجْزِي الْمُحْسِن۪ينَ ﴿١٢١﴾
اِنَّهُمَا مِنْ عِبَادِنَا الْمُؤْمِن۪ينَ ﴿١٢٢﴾ وَاِنَّ اِلْيَاسَ لَمِنَ الْمُرْسَل۪ينَۜ
﴿١٢٣﴾ اِذْ قَالَ لِقَوْمِه۪ٓ اَلَا تَتَّقُونَ ﴿١٢٤﴾ اَتَدْعُونَ بَعْلًا وَتَذَرُونَ
اَحْسَنَ الْخَالِق۪ينَۙ ﴿١٢٥﴾ اَللّٰهَ رَبَّكُمْ وَرَبَّ اٰبَٓائِكُمُ الْاَوَّل۪ينَ ﴿١٢٦﴾

**103**- Dema ku her du (ji emrê Xwedê re) teslîm bûn, ew li ser eniya wî gêr kir.

**104**- Me gazî li wî kir; Ey Îbrahîm!

**105**- Bi rastî ya me di xewnê de emrî te kirî te bi cih anî. Bêguman em bi vî awayî qencîkarên rast û durist xelat dikin.

**106**- Bêguman ev a ha, her îmtihaneke aşkera ye.

**107**- Me di ber kurê wî de qurbaneke mezin hinart.

**108**- Me di nav wan de yên ku di pişt wî re tên, navê wî bi qencî hêla.

**109**- Silav li Îbrahîm be!

**110**- Ha em bi vî awayî qencîkarên rast û durist xelat dikin.

**111**- Bêguman ew ji bendeyên me yên bawermend bû.

**112**- Me mizgîn da Îbrahîm ku bi (navê Îshaq kurek jê re çêbe) ew pêxemberekî salih e.

**113**- Me bereketa xwe da ser wî û da ser Îshaq. Ji kinêsa wan hinek baş bûn û hinek jî ji bo xwe sitemkarên aşkere bûn.

**114**- Sond be, me qenciya xwe li Mûsa û Harûn jî kir.

**115**- Me ew her du û gelên wan jî ji tengasiya mezin rizgar kirin.

**116**- Me arîkariya wan kir,vêca ew her yên serkeftî bûn.

**117**- Me Tewrata ronak û aşkera daye wan.

**118**- Me her du li ser riya rast, rasterê kirin.

**119**- Me di nav wan de yên ku di pişt wan re tên, navê wan bi qencî hêla.

**120**- Silav li Mûsa û Harûn be!

**121**- Bêguman em bi vî awayî qencîkarên rast û durist xelat dikin.

**122**- Bêguman her du jî ji bendeyên me yên bawermend bûn.

**123**- Bêguman Îlyas jî ji pêxemberan e.

**124**- Wê dema ji gelê xwe re got, ma hûn ji Xwedê natirsin?

**125**- Ma ji bilî çêtirînê afirîneran, hûn ji pûtê bi nav 'Be'l' re îbadetê dikin?

**126**- (Çêtirînê afirîneran) Ellah Teala, Xwedayê we ye, hem jî Xwedayê bav û kalên we yên pêşî ne.

فَكَذَّبُوهُ فَإِنَّهُمْ لَمُحْضَرُونَ ١٢٧ إِلَّا عِبَادَ اللّٰهِ الْمُخْلَصِينَ
١٢٨ وَتَرَكْنَا عَلَيْهِ فِي الْآخِرِينَ ١٢٩ سَلَامٌ عَلَىٰ إِلْ يَاسِينَ ١٣٠
إِنَّا كَذٰلِكَ نَجْزِي الْمُحْسِنِينَ ١٣١ إِنَّهُ مِنْ عِبَادِنَا الْمُؤْمِنِينَ
١٣٢ وَإِنَّ لُوطًا لَمِنَ الْمُرْسَلِينَ ١٣٣ إِذْ نَجَّيْنَاهُ وَأَهْلَهُ أَجْمَعِينَ
١٣٤ إِلَّا عَجُوزًا فِي الْغَابِرِينَ ١٣٥ ثُمَّ دَمَّرْنَا الْآخَرِينَ ١٣٦
وَإِنَّكُمْ لَتَمُرُّونَ عَلَيْهِمْ مُصْبِحِينَ ١٣٧ وَبِاللَّيْلِ أَفَلَا تَعْقِلُونَ
١٣٨ وَإِنَّ يُونُسَ لَمِنَ الْمُرْسَلِينَ ١٣٩ إِذْ أَبَقَ إِلَى الْفُلْكِ الْمَشْحُونِ
١٤٠ فَسَاهَمَ فَكَانَ مِنَ الْمُدْحَضِينَ ١٤١ فَالْتَقَمَهُ الْحُوتُ
وَهُوَ مُلِيمٌ ١٤٢ فَلَوْلَا أَنَّهُ كَانَ مِنَ الْمُسَبِّحِينَ ١٤٣ لَلَبِثَ
فِي بَطْنِهِ إِلَىٰ يَوْمِ يُبْعَثُونَ ١٤٤ فَنَبَذْنَاهُ بِالْعَرَاءِ وَهُوَ سَقِيمٌ
١٤٥ وَأَنْبَتْنَا عَلَيْهِ شَجَرَةً مِنْ يَقْطِينٍ ١٤٦ وَأَرْسَلْنَاهُ إِلَىٰ مِائَةِ
أَلْفٍ أَوْ يَزِيدُونَ ١٤٧ فَآمَنُوا فَمَتَّعْنَاهُمْ إِلَىٰ حِينٍ ١٤٨ فَاسْتَفْتِهِمْ
أَلِرَبِّكَ الْبَنَاتُ وَلَهُمُ الْبَنُونَ ١٤٩ أَمْ خَلَقْنَا الْمَلٰٓئِكَةَ
إِنَاثًا وَهُمْ شَاهِدُونَ ١٥٠ أَلَا إِنَّهُمْ مِنْ إِفْكِهِمْ لَيَقُولُونَ ١٥١ وَلَدَ
اللّٰهُ وَإِنَّهُمْ لَكَاذِبُونَ ١٥٢ أَصْطَفَى الْبَنَاتِ عَلَى الْبَنِينَ ١٥٣
مَا لَكُمْ

127- Vêca wan bawerî pê neanî û ew ê (di dojehê de) bêne berhevkirin.

128- Ji bilî bendeyên Xwedê yên dilsafî (ew ji vê cuda ne).

129- Me di nav wan de yên ku di pişt wî re tên, navê wî bi qencî hêla.

130- Silav li ser Îl'yasîn be!

131- Bêguman em bi vî awayî qencîkarên rast û durist xelat dikin.

132- Bi rastî ew jî ji bendeyên me yên bawermend bû.

133- Bêguman Lût jî ji pêxemberan e.

134- Wê dema Me Lût û malbata wî tev rizgar kirin...

135- Ji bilî pîrejinekê; ew digel yên di ezabê de ma.

136- Piştre Me ew ên din birin helakê.

137- Bêguman hûn jî sibehan di ber (cih û warên) wan re dibihurin.

138- Û êvaran jî, ma hê jî hûn aqil nagirin?

139- Bêguman Yûnus jî ji pêxemberan e.

140- Wê dema ku ew reviya çûbû keştiya barkirî.

141- Vêca yên di keştiyê de pişk avêtin, îcar Yûnus bû ji yên ku pişklêketî.

142- Masî Yûnus dabeland û ew bû ji yên ku lome li wan bûye.

143- Eger bi rastî ew ji wan nebûya, ew ên ku Xwedê pak didêran...

144- Dê heyanî roja qiyametê di zikê masî de bimaya.

145- Me ew (ji zikê masî) avêt bejahiyê û ew nexweşhal bû.

146- Me dareke ji kundiran li ser wî hêşîn kir (da ku siya xwe bide ser wî).

147- (Piştî ku sihheta wî hate cih) Me ew bi pêxemberî ji sed hezaran û hê bêhtirî re şand.

148- Vêca wan bawerî bi Yûnus anî, îcar me heya demekê jiyana xweş da wan.

149- Ji pûtperestan bipirse: Erê ma keç ên Xwedayê te ne û kur jî yên wan in?

150- Yan jî, dema ku me firîşte keç diafirandin, ew li wir hazir bûn?

151- Agahdar bin! Bi rastî ew bi derew û bêbextî dibêjin...

152- Ku Xwedê Teala (firîşte) welidandine. Bêguman ew her îftira û derewan dikin.

153- Qey Xwedê Teala, keç di ser kuran re girtine?!

مَا لَكُمْ كَيْفَ تَحْكُمُونَ ﴿١٥٤﴾ اَفَلَا تَذَكَّرُونَ ﴿١٥٥﴾ اَمْ لَكُمْ سُلْطَانٌ
مُبِينٌ ﴿١٥٦﴾ فَأْتُوا بِكِتَابِكُمْ اِنْ كُنْتُمْ صَادِقِينَ ﴿١٥٧﴾ وَجَعَلُوا بَيْنَهُ
وَبَيْنَ الْجِنَّةِ نَسَبًا وَلَقَدْ عَلِمَتِ الْجِنَّةُ اِنَّهُمْ لَمُحْضَرُونَ ﴿١٥٨﴾
سُبْحَانَ اللّٰهِ عَمَّا يَصِفُونَ ﴿١٥٩﴾ اِلَّا عِبَادَ اللّٰهِ الْمُخْلَصِينَ ﴿١٦٠﴾ فَاِنَّكُمْ
وَمَا تَعْبُدُونَ ﴿١٦١﴾ مَا اَنْتُمْ عَلَيْهِ بِفَاتِنِينَ ﴿١٦٢﴾ اِلَّا مَنْ هُوَ صَالِ الْجَحِيمِ
﴿١٦٣﴾ وَمَا مِنَّا اِلَّا لَهُ مَقَامٌ مَعْلُومٌ ﴿١٦٤﴾ وَاِنَّا لَنَحْنُ الصَّٓافُّونَ ﴿١٦٥﴾ وَاِنَّا
لَنَحْنُ الْمُسَبِّحُونَ ﴿١٦٦﴾ وَاِنْ كَانُوا لَيَقُولُونَ ﴿١٦٧﴾ لَوْ اَنَّ عِنْدَنَا ذِكْرًا
مِنَ الْاَوَّلِينَ ﴿١٦٨﴾ لَكُنَّا عِبَادَ اللّٰهِ الْمُخْلَصِينَ ﴿١٦٩﴾ فَكَفَرُوا بِهِ فَسَوْفَ
يَعْلَمُونَ ﴿١٧٠﴾ وَلَقَدْ سَبَقَتْ كَلِمَتُنَا لِعِبَادِنَا الْمُرْسَلِينَ ﴿١٧١﴾ اِنَّهُمْ لَهُمُ
الْمَنْصُورُونَ ﴿١٧٢﴾ وَاِنَّ جُنْدَنَا لَهُمُ الْغَالِبُونَ ﴿١٧٣﴾ فَتَوَلَّ عَنْهُمْ حَتّٰى حِينٍ
﴿١٧٤﴾ وَاَبْصِرْهُمْ فَسَوْفَ يُبْصِرُونَ ﴿١٧٥﴾ اَفَبِعَذَابِنَا يَسْتَعْجِلُونَ ﴿١٧٦﴾ فَاِذَا
نَزَلَ بِسَاحَتِهِمْ فَسَٓاءَ صَبَاحُ الْمُنْذَرِينَ ﴿١٧٧﴾ وَتَوَلَّ عَنْهُمْ حَتّٰى حِينٍ
﴿١٧٨﴾ وَاَبْصِرْ فَسَوْفَ يُبْصِرُونَ ﴿١٧٩﴾ سُبْحَانَ رَبِّكَ رَبِّ الْعِزَّةِ عَمَّا
يَصِفُونَ ﴿١٨٠﴾ وَسَلَامٌ عَلَى الْمُرْسَلِينَ ﴿١٨١﴾ وَالْحَمْدُ لِلّٰهِ رَبِّ الْعَالَمِينَ ﴿١٨٢﴾

سُورَةُ صٓ مَكِّيَّةٌ وَهِيَ
ثَمَانٍ وَثَمَانُونَ اٰيَةً

**154**- Çi bi we hatiye, hûn çawa hukim dikin?

**155**- Ma hûn hîç nafikirin?

**156**- Yan jî delîleke we ye aşkera heye (ku hûn ji Xwedê re zarokan didin îsbatkirin?

**157**- Vêca eger bera hûn rast dibêjin, de ka kitêba xwe bînin!

**158**- Muşrikan di neqeba Xwedê û cinan de xizimtî daniye. Sond be, cin jî dizanin ku ew ên (ji bo ezab) bêne berhevkirin.

**159**- Xwedê Teala ji ya ku ew wî pê diwesifînin pak û bilind e.

**160**- Ji bilî bendeyên Xwedê yên muxlis (ew ji vê cuda ne).

**161**- Bi rastî hûn û ew pûtên ku hûn perestina wan dikin...

**162**- Hûn nikarin tu kesî ji rê bixin.

**163**- Ji bilî wî kesên ku dê biçin dojehê.

**164**-(Firîşteyan got:) Ji bo her yekî ji me meqamekî kifşkirî heye (ku em tê de îbadetê Xwedê dikin).

**165**- Bêguman em, her ew in ên ku (di îbadetên xwe de) sef digirin...

**166**- Bi rastî jî em her ew in ên ku Xwedê ji her pûçiyê pak didêrin.

**167**- Her çiqas wan her digot...

**168**- Eger kitêbek ji kitêbên pêşiyan hebûya...

**169**- Teqez em ê jî bibûna bendeyên Xwedê Teala yên dilsafî!

**170**- Vêca (dema kitêb ji bo wan hat) wan bawerî pê neanî, paşê ew ê bizanin ka domahîka wan dê bibe çi.

**171**- Sond be, soza me ji bo bendeyên me yên pêxember borî bû (her ev e)...

**172**- Birastî serkeftin her ji wan re ye.

**173**- Bêguman leşkerên me jî teqez dê bi ser bikevin.

**174**- (Ya Muhemmed!) Vêca heta demekê tu berê xwe ji wan vegerîne.

**175**- Tu çavnêriya belaya ku were ser wan bike, ew jî dê (encama kufra xwe) bibînin.

**176**- Erê ma vêga ew bi lez ezab ji me dixwazin?

**177**- Ew (ezab) dema ku dakeve qada wan, sibeha wan ên ku hatine hişyarkirin, çiqas pîs dibe!

**178**- Tu heta demekê berê xwe ji wan vegerîne.

**179**- Çavnêriya ezabê ku dê were ser wan bike, ew jî dê (encama kufra xwe) bibînin.

**180**- Ew Xwedayê te, yê ku xwediyê izet û rûmetê ye, ji ya ku ew wî pê diwesifînin pak e, bilind e.

**181**- Silav li hemû pêxemberan bin!

**182**- Hemd (pesnên rind û şukrê bêdawîn) jî ji bo Perwerdegarê alemê be.



## SÛREYÊ SAD

Sûreyê Sad, 88 (heştê û heşt) ayet e. Piştî Sûreyê Qemerê li Mekkê nazil bûye.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

1- **Sad**! Sond be, bi vê Qurana ku xwedan pend û şîret e.

2- Nexêr, guman tê de tune ye, belkî ew ên ku kafir bûne di nav quretî û dijberiyekê de ne.

3- Beriya wan me çiqas milet birine helakê. Vêca wan dikir gazî û hawar, (lê belê) êdî dem ne dema xelasî û revê bû.

4- Ew (ên ku kafir bûne) ecêb dîtin ku ji nav wan pêxemberek ji wan re bê. Kafiran got: Ev, sêrbazekî pir derewkar e!

5- Erê ma ew tevekî me'bûdan dike yek me'bûd? Bêguman ev tiştekî pir ecêb e!

6- Giregir û mezinên wan (ji dîwana Ebû Talib) derketin û gotin: Li ser ya xwe berdewam bin, li ser perestina pûtên xwe sebir û sebat bikin. Bêşik ev a ku ji we tê xwestin tiştekî mezin e.

7- Me tiştekî welê di dînê vê dawiyê de jî nebihîstiye. Bes ev tiştek e ku wî ji cem xwe derxistiye.

8- Erê ma ji nav me hemûyan ev Quran ji Muhemmed tenê re hat? (Xwedê got:) Belkî ew der heqê Qurana min de di gumanê de ne. Nexêr! Belkî wan hêja ezabê min tehm nekiriye.

9- Yan jî, ma xezîneyên qenciya Xwedayê te, ew ê desthilat ê dayende li cem wan in?!

10- Yan jî, ma xwedanî û lihevragiriya erd û asimanan û yên di navbera wan de ji wan re ye? Vêca (ku wisa be) de bila bi hemû navgînan hilbin asîmanan (û ew kê bivên bila wehyê bidinê)!.

11- Ew (ên ku kafir bûne) ji leşkerên hevbendan leşkerekî (qaşo) hêzdar e, lê ew ê li wir (li Bedrê) têk biçe.

12- Beriya wan (muşrikên) gelê Nûh, gelê Ad û Firewnê ku xwedanê zilm û seltenetê jî, bi pêxemberên xwe bawerî neanîbû.

13- Qewmê Semûd, qewmê Lût û xelkê Eykeyê jî (bi pêxemberên xwe bawerî neanîbû). Ha ev tev hevalbendên hev in.

14- Temamê wan bi pêxemberên xwe bawerî neanî, vêca ezab li ser wan misoger bû.

15- Ev ê han jî, bes çavnêriya yek qîrekê dikin, (gava ku ew bê) jê re veger û rawestan tune ye.

16- (Ew ên ku kafir bûne) Gotin: Xwedayê me! Beriya roja hesabdîtinê ku bê, para me (ji ceza) zû bide me.

اِصْبِرْ عَلٰى مَا يَقُولُونَ وَاذْكُرْ عَبْدَنَا دَاوُدَ ذَا الْاَيْدِۚ اِنَّهُٓ اَوَّابٌ ﴿١٧﴾
اِنَّا سَخَّرْنَا الْجِبَالَ مَعَهُ يُسَبِّحْنَ بِالْعَشِيِّ وَالْاِشْرَاقِۙ ﴿١٨﴾ وَالطَّيْرَ
مَحْشُورَةًۜ كُلٌّ لَهُٓ اَوَّابٌ ﴿١٩﴾ وَشَدَدْنَا مُلْكَهُ وَاٰتَيْنَاهُ الْحِكْمَةَ
وَفَصْلَ الْخِطَابِ ﴿٢٠﴾ وَهَلْ اَتٰيكَ نَبَؤُا الْخَصْمِ اِذْ تَسَوَّرُوا الْمِحْرَابَۙ
﴿٢١﴾ اِذْ دَخَلُوا عَلٰى دَاوُدَ فَفَزِعَ مِنْهُمْ قَالُوا لَا تَخَفْۚ خَصْمَانِ بَغٰى
بَعْضُنَا عَلٰى بَعْضٍ فَاحْكُمْ بَيْنَنَا بِالْحَقِّ وَلَا تُشْطِطْ وَاهْدِنَٓا اِلٰى
سَوَٓاءِ الصِّرَاطِ ﴿٢٢﴾ اِنَّ هٰذَٓا اَخِي لَهُ تِسْعٌ وَتِسْعُونَ نَعْجَةً وَلِيَ
نَعْجَةٌ وَاحِدَةٌ فَقَالَ اَكْفِلْنِيهَا وَعَزَّنِي فِي الْخِطَابِ ﴿٢٣﴾ قَالَ لَقَدْ
ظَلَمَكَ بِسُؤَالِ نَعْجَتِكَ اِلٰى نِعَاجِهِۜ وَاِنَّ كَثِيرًا مِنَ الْخُلَطَٓاءِ
لَيَبْغِي بَعْضُهُمْ عَلٰى بَعْضٍ اِلَّا الَّذِينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ
وَقَلِيلٌ مَا هُمْۜ وَظَنَّ دَاوُدُ اَنَّمَا فَتَنَّاهُ فَاسْتَغْفَرَ رَبَّهُ وَخَرَّ رَاكِعًا
وَاَنَابَ ﴿٢٤﴾ فَغَفَرْنَا لَهُ ذٰلِكَۜ وَاِنَّ لَهُ عِنْدَنَا لَزُلْفٰى وَحُسْنَ مَاٰبٍ ﴿٢٥﴾
يَا دَاوُدُ اِنَّا جَعَلْنَاكَ خَلِيفَةً فِي الْاَرْضِ فَاحْكُمْ بَيْنَ النَّاسِ بِالْحَقِّ
وَلَا تَتَّبِعِ الْهَوٰى فَيُضِلَّكَ عَنْ سَبِيلِ اللّٰهِۜ اِنَّ الَّذِينَ يَضِلُّونَ
عَنْ سَبِيلِ اللّٰهِ لَهُمْ عَذَابٌ شَدِيدٌ بِمَا نَسُوا يَوْمَ الْحِسَابِ ﴿٢٦﴾

**17**- (Ya Muhemmed!) Xwe li hemberî ya ku ew dibêjin ragire û evdê me Dawud di bîra xwe bîne ku ew xwedanhêz bû, bi rastî jî berê wî her bi bal Xwedê ve bû.

Hêza Dawud, sebat û semaxa wî ya li ser îbadetê ye. Birastî wî rojekê, rojî digirt, rojekê dixwar. Sêyeke şevê radiket û di katên din de tim îbadet dikir.

**18**- Me çiya misixur kirin ku ew sibeh û êvarê ligel wî tesbih didan.

**19**- Teyr û tûrê ku (li denge tesbihê wî) kom dibûn (me êxistin ber emre wî). Her yekî ji wan lê vedigera.

**20**- Me hukumraniya wî xurt kir, me hîkmet (pêxemberî) û qabiliyeta axaftineke xweş û zelal dabûyê.

**21**- Ma xebera her du dawedaran dema bi ser dîwarê mihrabê ketin ji te re nehatiye gotin?

**22**- Wê dema ketin cem Dawud pêxember, vêca ji wan tirsiya. Jê re gotin: Metirse, em du dawedar in; yekî ji me neheqî li yê din kiriye, de di navbera me de tu bi edaletê hukim bike, neheqiyê neke û me li ser riya rast rasterê bike.

**23**-(Yekî ji wan got:) Ev birayê min not û neh mêşinên wî hene û yê min jî yek mêşineke bi tenê ye. Ji min re dibêje: Wê jî bide min û bi xeberdanê zora min biriye.

**24**- Dawud jê re wiha got: Sond be; wî bi xwestina mêşina te, ji bo bixe nav mêşinên xwe (da ku yên wî bi wê re bibin sed) neheqî li te kiriye. Bêguman pirên hevpişkan, tecawizî mafê hev dikin. Lê belê hevpişkên ku bawerî bînin û karên qenc bikin ew cuda ne, ew jî pir pir hindik in! Dawud bawer kir ku me ew îmtîhan kiriye. Ji Xwedayê xwe lêborîn xwest, çû sicûdê û tobe kir.

**25**- Vêca em jî lê borîn. Bêguman li cem me jê re meqamekî bilind û lêvegereke spehî heye.

**26**- Ey Dawud! Me tu li ser erdê kirî şûngir. Vêca di navbera mirovan de bi edaletî hukim bike û nede dûv nefsa xwe, vêca ew ê te ji riya Xwedê şaş bike. Bêguman ew ên ku ji riya Xwedê şaş bibin, ji ber ku wan roja hesabê ji bîr kiriye ji wan re ezabekî dijwar heye.

وَمَا خَلَقْنَا السَّمَٓاءَ وَالْاَرْضَ وَمَا بَيْنَهُمَا بَاطِلًاۜ ذٰلِكَ ظَنُّ الَّذٖينَ
كَفَرُواۚ فَوَيْلٌ لِلَّذٖينَ كَفَرُوا مِنَ النَّارِۜ ﴿٢٧﴾ اَمْ نَجْعَلُ الَّذٖينَ اٰمَنُوا
وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ كَالْمُفْسِدٖينَ فِي الْاَرْضِۘ اَمْ نَجْعَلُ الْمُتَّقٖينَ
كَالْفُجَّارِ ﴿٢٨﴾ كِتَابٌ اَنْزَلْنَاهُ اِلَيْكَ مُبَارَكٌ لِيَدَّبَّرُٓوا اٰيَاتِهٖ وَلِيَتَذَكَّرَ
اُولُوا الْاَلْبَابِ ﴿٢٩﴾ وَوَهَبْنَا لِدَاوُدَ سُلَيْمٰنَۜ نِعْمَ الْعَبْدُۜ اِنَّهُٓ اَوَّابٌۜ ﴿٣٠﴾
اِذْ عُرِضَ عَلَيْهِ بِالْعَشِيِّ الصَّافِنَاتُ الْجِيَادُۙ ﴿٣١﴾ فَقَالَ اِنّٖٓي اَحْبَبْتُ
حُبَّ الْخَيْرِ عَنْ ذِكْرِ رَبّٖيۚ حَتّٰى تَوَارَتْ بِالْحِجَابِ ﴿٣٢﴾ رُدُّوهَا عَلَيَّۜ
فَطَفِقَ مَسْحًا بِالسُّوقِ وَالْاَعْنَاقِ ﴿٣٣﴾ وَلَقَدْ فَتَنَّا سُلَيْمٰنَ وَاَلْقَيْنَا
عَلٰى كُرْسِيِّهٖ جَسَدًا ثُمَّ اَنَابَ ﴿٣٤﴾ قَالَ رَبِّ اغْفِرْ لٖي وَهَبْ لٖي مُلْكًا
لَا يَنْبَغٖي لِاَحَدٍ مِنْ بَعْدٖيۚ اِنَّكَ اَنْتَ الْوَهَّابُ ﴿٣٥﴾ فَسَخَّرْنَا لَهُ الرّٖيحَ
تَجْرٖي بِاَمْرِهٖ رُخَٓاءً حَيْثُ اَصَابَۙ ﴿٣٦﴾ وَالشَّيَاطٖينَ كُلَّ بَنَّٓاءٍ وَغَوَّاصٍۙ
﴿٣٧﴾ وَاٰخَرٖينَ مُقَرَّنٖينَ فِي الْاَصْفَادِ ﴿٣٨﴾ هٰذَا عَطَٓاؤُنَا فَامْنُنْ اَوْ اَمْسِكْ
بِغَيْرِ حِسَابٍ ﴿٣٩﴾ وَاِنَّ لَهُ عِنْدَنَا لَزُلْفٰى وَحُسْنَ مَاٰبٍۚ ﴿٤٠﴾ وَاذْكُرْ
عَبْدَنَٓا اَيُّوبَۢ اِذْ نَادٰى رَبَّهُٓ اَنّٖي مَسَّنِيَ الشَّيْطَانُ بِنُصْبٍ
وَعَذَابٍۜ ﴿٤١﴾ اُرْكُضْ بِرِجْلِكَۚ هٰذَا مُغْتَسَلٌ بَارِدٌ وَشَرَابٌ ﴿٤٢﴾

وَوَهَبْنَا

27- Me erd û asîman û yên di navbera wan de mişêya çênekiriye Ev (a ku dibêjin mişêya ya), gumana wanên ku kafir bûne. Vêca hey wax li halê kafiran be, ji ber ku yê bikevin êgir de!

28- Erê ma em ê wek hev bigirin; ew ên ku wan bawerî anî û karên qenc kirin û ew ên ku li ser erdê fesadiyê dikin. Yan jî em ê wan kesên ku xwe ji ezabê Xwedê biparêzin û wan kesên ku ji riya rastî derketine, wekhev bihesibînin?

29- Ya Muhemmed! Me ev Quran ji bo te nazil kir ku ew pîroz e, da ku di ayetên wê de bifikirin û aqilmend jê şîretê bigirin.

30- Me (kurek bi navê) Suleyman daye Dawud. Suleyman çi xweş bende bû! Birastî jî ew pir tobekar bû.

31- Wê demê di çaxê êvarê de ji Suleyman re hespên rewan hatin rapêşkirin.

32- Suleyman (a.s.) got: Bi rastî min hezkirina van hespan di ser zikrê Xwedê (nimêja esrê) re girt. (Bi hespan ve mijûl bû) heta ku roj çû ava.

33- (Ji ber vê yekê got) Wan ji min re bînin û (ji bo Xwedê) dest bi jêkirina pî û stûyên wan kir.

34- Sond be; me Suleyman imtîhan kiriye. Me cesedek (perçeyek ji zarokê) avêt ser textê wî. Piştre wî tobe kir û li Xwedayê xwe vegeriya.

35- Wiha dua kir: Xwedayê min! Li min bibore, mulk/hukimdariyeke wisa bide min ku piştî min tu kes negihîje wê. Bêguman her tu yî yê dayende.

36- Li hemberî vê me jê re ba misixur kir ku devera ew bixwaze dê bi fermana wî bi nermahî bigere.

37-(Me jê re) şeytan jî (misixur kirin ku wan) jê re qesr lê dikirin û noqavî dikirin (ku ji bo wî dur û mercan dertanîn).

38- (Me) hin mexlûqên din jî ku bi qeydan girêdayî bûn (jê re berdest kirin).

39- (Me jê re) Got: Ha dana me ev e, tu dixwazî bide (ji yê ku tu divê re) û tu dixwazî nede, tu jê nayê pirsyarkirin.

40- Bêguman li nik me, meqamekî wî yî bilind û lêvegereke rind heye.

41- Behsa bendeyê me Eyyûb (e) bike, wê dema gazî Xwedayê xwe kir: Bêguman şeytên meşeqet û azar gihandiye min.

42- (Me jê re got:) Lingê xwe li erdê bixe! (Gava av derket, Xwedê jê re got:) Ev aveke sar e ji bo vexwarin û şûştinê ye.

وَوَهَبْنَا لَهُٓ اَهْلَهُ وَمِثْلَهُمْ مَعَهُمْ رَحْمَةً مِنَّا وَذِكْرٰى لِاُو۬لِى الْاَلْبَابِ
﴿٤٣﴾ وَخُذْ بِيَدِكَ ضِغْثًا فَاضْرِبْ بِهٖ وَلَا تَحْنَثْۜ اِنَّا وَجَدْنَاهُ صَابِرًاۜ
نِعْمَ الْعَبْدُۜ اِنَّهُٓ اَوَّابٌ ﴿٤٤﴾ وَاذْكُرْ عِبَادَنَٓا اِبْرٰهٖيمَ وَاِسْحٰقَ وَيَعْقُوبَ
اُو۬لِى الْاَيْدٖى وَالْاَبْصَارِ ﴿٤٥﴾ اِنَّٓا اَخْلَصْنَاهُمْ بِخَالِصَةٍ ذِكْرَى
الدَّارِۚ ﴿٤٦﴾ وَاِنَّهُمْ عِنْدَنَا لَمِنَ الْمُصْطَفَيْنَ الْاَخْيَارِ ﴿٤٧﴾ وَاذْكُرْ
اِسْمٰعٖيلَ وَالْيَسَعَ وَذَا الْكِفْلِۜ وَكُلٌّ مِنَ الْاَخْيَارِۜ ﴿٤٨﴾ هٰذَا ذِكْرٌۜ
وَاِنَّ لِلْمُتَّقٖينَ لَحُسْنَ مَاٰبٍۙ ﴿٤٩﴾ جَنَّاتِ عَدْنٍ مُفَتَّحَةً لَهُمُ الْاَبْوَابُۚ
﴿٥٠﴾ مُتَّكِـٖٔينَ فٖيهَا يَدْعُونَ فٖيهَا بِفَاكِهَةٍ كَثٖيرَةٍ وَشَرَابٍ
﴿٥١﴾ وَعِنْدَهُمْ قَاصِرَاتُ الطَّرْفِ اَتْرَابٌ ﴿٥٢﴾ هٰذَا مَا تُوعَدُونَ
لِيَوْمِ الْحِسَابِ ﴿٥٣﴾ اِنَّ هٰذَا لَرِزْقُنَا مَا لَهُ مِنْ نَفَادٍۚ ﴿٥٤﴾ هٰذَاۜ وَاِنَّ
لِلطَّاغٖينَ لَشَرَّ مَاٰبٍۙ ﴿٥٥﴾ جَهَنَّمَۚ يَصْلَوْنَهَاۚ فَبِئْسَ الْمِهَادُ ﴿٥٦﴾ هٰذَاۙ
فَلْيَذُوقُوهُ حَمٖيمٌ وَغَسَّاقٌۙ ﴿٥٧﴾ وَاٰخَرُ مِنْ شَكْلِهٖٓ اَزْوَاجٌۜ ﴿٥٨﴾
هٰذَا فَوْجٌ مُقْتَحِمٌ مَعَكُمْۚ لَا مَرْحَبًا بِهِمْۜ اِنَّهُمْ صَالُوا النَّارِ
﴿٥٩﴾ قَالُوا بَلْ اَنْتُمْ لَا مَرْحَبًا بِكُمْۜ اَنْتُمْ قَدَّمْتُمُوهُ لَنَاۚ فَبِئْسَ الْقَرَارُ
﴿٦٠﴾ قَالُوا رَبَّنَا مَنْ قَدَّمَ لَنَا هٰذَا فَزِدْهُ عَذَابًا ضِعْفًا فِى النَّارِ ﴿٦١﴾

حزب ٤

**43**- Me jin û zarokên wî lê vegerandin û bi qasî wan jî hinekî din danê, ev dilovaniyek e ji cem me û bîranînek e ji bo aqildaran.

**44**- (Me ji Eyyûb re got:) Rahêje baqekî bi dest xwe bigire, vêca bi wan li jina xwe bide, ji sonda xwe venegere. Bêguman me Eyyûb evdekî sebirkêş dît. Çi xweş evd e ew! Bêguman ew lêvegerê bal taetê Rebê xwe bû.

**45**- Behsa bendeyên me Îbrahîm, Îshaq û Yaqûb jî bike, ew ên ku xwedanhêz û şareza û xwedandîtin bûn.

**46**- Bêguman me ew ji bo xwe, bi xesletên paqij bijartin ku ew li axiretê difikirîn (û ku ji bo wê dixebitîn).

**47**- Bêguman ew li nik me ji qencîkarên bijarte ne.

**48**- Behsa Îsmail, Elyese û Zulkifil jî bike. Hemû jî ji bijarteyan in.

**49**- Ha ev (behsa van pêxemberan) bibîranînek e. Bêguman ji bo yê mutteqî teqez lêvegereke rind heye...

**50**- Ku bihiştên akincîbûnê ne, dergehên wan li taqê (ji wan re) vekirî ne.

**51**- Ew tê de (li ser textan) paldayî ne, ew tê de gelek fêkî û vexwarinan daxwaz dikin.

**52**- Li cem wan dilberên ku tenê çavên wan li mêrê wan in hene ku ji hev re hevsal in.

**53**- Ha ev in, tiştên ku ji bo roja hesabdîtinê soza wan ji we re hatiye dayîn.

**54**- Bêguman ev, dayîna me ye ku jê re qedandin nîn e (û her seraqetî ye).

**55**- Ev wisa ye, bi rastî ji kafirên serxweveçûyî re aqîbeteke pir xerab heye...

**56**- Aqîbeta wan dojeh e. Ew dojeh çi pîs livîn e.

**57**- Ew ceza, aveke kelî, şij û edab e, êdî bila wî ezabî tehm bikin.

**58**- Mîna vî ezabî (ji bo wan) hin ezabên din jî hene (dê wan jî tehm bikin).

**59**- (Ji giregir û serokên kafiran re dê bê gotin:) Ha ev civat (li dinyayê dûvketiyên we bûn) digel we noqî dojehê dibin. (Giregir û serok dê bêjin:) Hûn ne bi xêr û ne bi selametî hatin! Bêguman ew dê bikevin agirê cehenemê.

**60**- (Dûvketî jî ji serokên xwe re) dibêjin: Nexêr, belkî hûn ne bi xêr û ne bi selametî hatin! We ev anî pêşiya me. Vêca ev çi pîs wargeh e!

**61**- Dîsa ew dibêjin: Xwedayê me! Kê ev anîbe pêşiya me, tu ezabê wî qat qat zêde bike!

وَقَالُوا مَا لَنَا لَا نَرٰى رِجَالًا كُنَّا نَعُدُّهُمْ مِنَ الْاَشْرَارِ ﴿٦٢﴾ اَتَّخَذْنَاهُمْ
سِخْرِيًّا اَمْ زَاغَتْ عَنْهُمُ الْاَبْصَارُ ﴿٦٣﴾ اِنَّ ذٰلِكَ لَحَقٌّ تَخَاصُمُ اَهْلِ
النَّارِ ﴿٦٤﴾ قُلْ اِنَّمَا اَنَا مُنْذِرٌ وَمَا مِنْ اِلٰهٍ اِلَّا اللّٰهُ الْوَاحِدُ الْقَهَّارُ
﴿٦٥﴾ رَبُّ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَمَا بَيْنَهُمَا الْعَزِيزُ الْغَفَّارُ ﴿٦٦﴾ قُلْ هُوَ
نَبَؤٌا عَظِيمٌ ﴿٦٧﴾ اَنْتُمْ عَنْهُ مُعْرِضُونَ ﴿٦٨﴾ مَا كَانَ لِيَ مِنْ عِلْمٍ
بِالْمَلَاِ الْاَعْلٰى اِذْ يَخْتَصِمُونَ ﴿٦٩﴾ اِنْ يُوحٰى اِلَيَّ اِلَّا اَنَّمَا اَنَا نَذِيرٌ
مُبِينٌ ﴿٧٠﴾ اِذْ قَالَ رَبُّكَ لِلْمَلٰٓئِكَةِ اِنِّي خَالِقٌ بَشَرًا مِنْ طِينٍ ﴿٧١﴾ فَاِذَا
سَوَّيْتُهُ وَنَفَخْتُ فِيهِ مِنْ رُوحِي فَقَعُوا لَهُ سَاجِدِينَ ﴿٧٢﴾ فَسَجَدَ
الْمَلٰٓئِكَةُ كُلُّهُمْ اَجْمَعُونَ ﴿٧٣﴾ اِلَّا اِبْلِيسَ اِسْتَكْبَرَ وَكَانَ مِنَ
الْكَافِرِينَ ﴿٧٤﴾ قَالَ يَا اِبْلِيسُ مَا مَنَعَكَ اَنْ تَسْجُدَ لِمَا خَلَقْتُ بِيَدَيَّ
اَسْتَكْبَرْتَ اَمْ كُنْتَ مِنَ الْعَالِينَ ﴿٧٥﴾ قَالَ اَنَا خَيْرٌ مِنْهُ خَلَقْتَنِي مِنْ
نَارٍ وَخَلَقْتَهُ مِنْ طِينٍ ﴿٧٦﴾ قَالَ فَاخْرُجْ مِنْهَا فَاِنَّكَ رَجِيمٌ ﴿٧٧﴾ وَاِنَّ
عَلَيْكَ لَعْنَتِي اِلٰى يَوْمِ الدِّينِ ﴿٧٨﴾ قَالَ رَبِّ فَاَنْظِرْنِي اِلٰى يَوْمِ يُبْعَثُونَ
﴿٧٩﴾ قَالَ فَاِنَّكَ مِنَ الْمُنْظَرِينَ ﴿٨٠﴾ اِلٰى يَوْمِ الْوَقْتِ الْمَعْلُومِ ﴿٨١﴾ قَالَ
فَبِعِزَّتِكَ لَاُغْوِيَنَّهُمْ اَجْمَعِينَ ﴿٨٢﴾ اِلَّا عِبَادَكَ مِنْهُمُ الْمُخْلَصِينَ ﴿٨٣﴾

قَالَ

**62**- (Serok û giregirên kafir) Ji hev re dibêjin: Erê ma ji bo çi em wan zilamên ku me ew (li dinyayê) ji xeraban dihesibandin, li vir nabînin?

**63**- Me tinazê xwe bi wan dikir (vêca ew li ser rastiyê bûn û ew çûne cenetê)? Yan jî ew li ber çavên me winda bûne (ku em wan nabînin)?

**64**- Bêguman ev hevrikiya dojehiyan (di vî şeklî de) rast e û teqez dê misoger bibe.

**65**- (Ya Muhemmed!) Bibêje: Ez bes hişyarkerek im, ji Xwedê pê ve tu me'bûdê heq tun e, ew Xwedayê ku her yek e û hêzşikênê her hêzê ye.

**66**- (Ew) Perwerdegarê erd û asîmanan e û Perwerdegarê çiqas tiştê di navbera wan de ye, Ew ê ku (di kar û barê xwe de) desthilat ê gunehjêbir e.

**67**- Bibêje: Ev Quran xebereke gelek mezin e.

**68**- Hûn jî berê xwe jê vedigerînin.

**69**- Tu zanebûna min, bi civata bilind (a firîşteyan), wê dema ku wan (der barê çêkirina Adem de) di nav xwe de munaqeşe dikir, tune bû (eger ku ne ji wehyê bûya).

**70**- Bes ji bo ku ez hişyarker û agahdarekî aşkera me, wehî ji min re tê.

**71**- Dema Xwedayê te ji firîşteyan re got; bêguman Ez ê ji heriyê mirovekî biafirînim.

**72**- Vêca dema min ew temam kir û min ji cem xwe ruh berdayê, vêca hemen jê re herin sicûdê.

**73**- Îcar hemû firîşte jê re çûne sicûdê.

**74**- Lê belê Îblîs neçû sicûdê; wî xwe mezin dêra û ew bû ji kafiran.

**75**- Xwedê jê re got: Ey Îblîs! Ew çi tişt bû nehêla ku tu ji bo wî herî sicûdê, ew ê ku min ew bi destên xwe afirandî? Erê ma te xwe mezin dêra yan jî tu bûyî ji yên ku xwe bilind dibînin?

**76**- Îblîs got: Ez ji wî çêtir im, Te ez ji êgir afirandime û Te ew ji heriyê afirandiye.

**77**- Xweda got: Nexwe ji wê derkeve, here! Êdî bêguman tu (ji rehma min) hatî qewirandin!

**78**- Heya roja qiyametê laneta min li ser te ye!

**79**- Îblîsî got: Xwedayê min! Nexwe heta roja qiyametê muhletê (derfetê) bide min (min nemirîne).

**80**- Xwedê Teala jê re got: Muhlet ji te re hatiye dayîn...

**81**- Heya roja diyarkirî.

**82**- Îblîs got: Bi îzet û ezemeta te sond be, teqez ez ê wan tevan ji riya rastiyê derînim!

**83**- Lê belê, evdên te yên bawermend ên dilpak ew cuda ne (ez nikarim wan ji rê derînim).

قَالَ فَالْحَقُّ وَالْحَقَّ اَقُولُ ﴿٨٤﴾ لَاَمْلَـَٔنَّ جَهَنَّمَ مِنْكَ وَمِمَّنْ تَبِعَكَ مِنْهُمْ
اَجْمَعِينَ ﴿٨٥﴾ قُلْ مَٓا اَسْـَٔلُكُمْ عَلَيْهِ مِنْ اَجْرٍ وَمَٓا اَنَا مِنَ الْمُتَكَلِّفِينَ
﴿٨٦﴾ اِنْ هُوَ اِلَّا ذِكْرٌ لِلْعَالَمِينَ ﴿٨٧﴾ وَلَتَعْلَمُنَّ نَبَاَهُ بَعْدَ حِينٍ ﴿٨٨﴾




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

تَنْزِيلُ الْكِتَابِ مِنَ اللّٰهِ الْعَزِيزِ الْحَكِيمِ ﴿١﴾ اِنَّٓا اَنْزَلْنَٓا اِلَيْكَ
الْكِتَابَ بِالْحَقِّ فَاعْبُدِ اللّٰهَ مُخْلِصًا لَهُ الدِّينَ ﴿٢﴾ اَلَا لِلّٰهِ
الدِّينُ الْخَالِصُ وَالَّذِينَ اتَّخَذُوا مِنْ دُونِهِٓ اَوْلِيَٓاءَ مَا نَعْبُدُهُمْ
اِلَّا لِيُقَرِّبُونَٓا اِلَى اللّٰهِ زُلْفٰى اِنَّ اللّٰهَ يَحْكُمُ بَيْنَهُمْ فٖى مَا هُمْ فٖيهِ
يَخْتَلِفُونَ اِنَّ اللّٰهَ لَا يَهْدٖى مَنْ هُوَ كَاذِبٌ كَفَّارٌ ﴿٣﴾ لَوْ اَرَادَ اللّٰهُ
اَنْ يَتَّخِذَ وَلَدًا لَاصْطَفٰى مِمَّا يَخْلُقُ مَا يَشَٓاءُ سُبْحَانَهُ هُوَ
اللّٰهُ الْوَاحِدُ الْقَهَّارُ ﴿٤﴾ خَلَقَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ بِالْحَقِّ يُكَوِّرُ
الَّيْلَ عَلَى النَّهَارِ وَيُكَوِّرُ النَّهَارَ عَلَى الَّيْلِ وَسَخَّرَ الشَّمْسَ
وَالْقَمَرَ كُلٌّ يَجْرٖى لِاَجَلٍ مُسَمًّى اَلَا هُوَ الْعَزٖيزُ الْغَفَّارُ ﴿٥﴾

**84**- Ellah Teala jê re got: Heqî her ji aliyê min e û teqez ez ji heqiyê pê ve jî nabêjim...

**85**- Sond be ez ê dojehê ji (şeytanê mîna) te û ji zuriyata Adem ên ku li pey te bên, dagirim.

**86**- (Ya Muhemmed!) Bibêje: Ez li ser ragihandinê tu heqekî ji we naxwazim û ez ji ber xwe ve jî Quranê lênayînim.

**87**- Ev Quran, ji bo tevekî alemê bes ders û şîret e.

**88**- Sond be hûn ê teqez xeberên wê piştî demekê bizanin û fehm bikin.

## SÛREYÊ ZUMER

Sûreyê Zumer, 75 (heftê û pênc) ayet e. Li Mekkê daketiye. Navê sûre ji ayetên 71'em û 73'em tê ku di wan de bêjeya zumer derbas bûye û bi mehneya civatên cur bi cur e.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

**1**- Ev Quran, ji cem Xwedê ve hatiye hinartin, ew ê ku (di kar û barê xwe de) deshilat ê xwedanhîkmet e.

**2**- (Ya Muhemmed!) Bêguman me ev Quran bi duristî ji te re hinartiye. Vêca tu jî bes ji bo Xwedê ji dil îbadet bike.

**3**- Agahdar bin! Dînê xalis û durist ji bo Xwedê ye. Ew ên ku ji bilî Xwedê ji xwe re dost û arîkaran digrin –dibêjin; em bes da ku me nêzîkî Xwedê bikin em perestina wan dikin- bêguman Xwedê, dê di navbera wan de, der barê ya ku ew tê de ketine îxtilafê hukim bike. Bêguman Xwedê, yê ku zêde derewkar û kafir e, rasterê nake.

**4**- Eger Xwedê bixwesta ku ji xwe re zarok (kur an keç) bigirta, helbet ji mexlûqên xwe wî kî bixwesta dê ew ji xwe re bigirta. Xwedê (ji girtina zarok û şerîkan) pak û munezeh e. Xwedê Teala, her ew e yê di ulûhiyeta xwe de yek, di rubûbiyeta xwe de jî serdest û tek.

**5**- Xwedê Teala erd û asîman bi duristî û bi hîkmet afirandine. Ew şevê li ser rojê dipêçe, rojê jî li ser şevê dipêçe. Roj û heyv ji fermana xwe re tewandine. Her yek ji wan heta demeke diyarkirî dê (di rêgeha xwe de) bigerin. Agahdar bin! Her Xwedê ye yê desthilat, yê gunehjêbir.

خَلَقَكُمْ مِنْ نَفْسٍ وَاحِدَةٍ ثُمَّ جَعَلَ مِنْهَا زَوْجَهَا وَاَنْزَلَ لَكُمْ
مِنَ الْاَنْعَامِ ثَمَانِيَةَ اَزْوَاجٍ يَخْلُقُكُمْ فِى بُطُونِ اُمَّهَاتِكُمْ خَلْقًا
مِنْ بَعْدِ خَلْقٍ فِى ظُلُمَاتٍ ثَلٰثٍ ذٰلِكُمُ اللّٰهُ رَبُّكُمْ لَهُ الْمُلْكُ
لَٓا اِلٰهَ اِلَّا هُوَ فَاَنّٰى تُصْرَفُونَ ﴿٦﴾ اِنْ تَكْفُرُوا فَاِنَّ اللّٰهَ غَنِىٌّ عَنْكُمْ
وَلَا يَرْضٰى لِعِبَادِهِ الْكُفْرَ وَاِنْ تَشْكُرُوا يَرْضَهُ لَكُمْ وَلَا تَزِرُ
وَازِرَةٌ وِزْرَ اُخْرٰى ثُمَّ اِلٰى رَبِّكُمْ مَرْجِعُكُمْ فَيُنَبِّئُكُمْ بِمَا كُنْتُمْ
تَعْمَلُونَ اِنَّهُ عَلِيمٌ بِذَاتِ الصُّدُورِ ﴿٧﴾ وَاِذَا مَسَّ الْاِنْسَانَ ضُرٌّ
دَعَا رَبَّهُ مُنِيبًا اِلَيْهِ ثُمَّ اِذَا خَوَّلَهُ نِعْمَةً مِنْهُ نَسِىَ مَا كَانَ يَدْعُٓوا
اِلَيْهِ مِنْ قَبْلُ وَجَعَلَ لِلّٰهِ اَنْدَادًا لِيُضِلَّ عَنْ سَبِيلِهِ قُلْ تَمَتَّعْ
بِكُفْرِكَ قَلِيلًا اِنَّكَ مِنْ اَصْحَابِ النَّارِ ﴿٨﴾ اَمَّنْ هُوَ قَانِتٌ
اٰنَٓاءَ الَّيْلِ سَاجِدًا وَقَٓائِمًا يَحْذَرُ الْاٰخِرَةَ وَيَرْجُوا رَحْمَةَ رَبِّهِ
قُلْ هَلْ يَسْتَوِى الَّذِينَ يَعْلَمُونَ وَالَّذِينَ لَا يَعْلَمُونَ اِنَّمَا
يَتَذَكَّرُ اُولُوا الْاَلْبَابِ ﴿٩﴾ قُلْ يَا عِبَادِ الَّذِينَ اٰمَنُوا اتَّقُوا
رَبَّكُمْ لِلَّذِينَ اَحْسَنُوا فِى هٰذِهِ الدُّنْيَا حَسَنَةٌ وَاَرْضُ اللّٰهِ
وَاسِعَةٌ اِنَّمَا يُوَفَّى الصَّابِرُونَ اَجْرَهُمْ بِغَيْرِ حِسَابٍ ﴿١٠﴾

قُلْ

**6**- Xwedê hûn ji yek nefsê afirandine. Paşê ji wî jî hevjîna wî afirandiye (da ku zuriyet ji wan zêde bibe). Ji bo we ji terşan (deve, dewar û pezan) heşt zo xuliqandine. Di zikê dayikên we de, di nav sê tarîtiyan de, bi çêkirineke di pey çêkirinekê de hûn afirandin. Ha ew afirîner, Xwedayê we Ellah Teala ye. Xwedanî û hukumranî her ji bo wî ye. Ji wî pê ve tu Xweda tun e. Vêca hûn çawa berê xwe ji tewhîda nav û sifetên wî dizivirînin?!

Ji heşt cotan meqsed nêr û mê yên deveh, dewar, bizin û mêşinan e. Ji sê tarîtiyan mebest, tarîtiya kîsik e ku zarokê dipêçe, tarîtiya malzarokê ye ku ew zarokê di kîs de dihewîne û tarîtiya zik e ku malzarok tê de bi cih bûye. Ji xuliqandinek piştî xuliqandinekê mebest: Çêbûna insên û qonaxên wî yên di malzarokê de ne; menî, xwîna meyî, parçegoşt, hestî û zarokatiya tam nestewiyayî ye.

**7**- Eger (piştî baweriyê) hûn kafir bibin, vêca bi rastî hewcedariya Xwedê bi we tune ye û ew bi kufra we jî neqayîl e. Eger hûn şukrê wî bikin Ew bi vê ji we qayîl e. Qet tu gunehkarek gunehê tu kesî hilnagire. Paşê (li axretê) vegera we bes bi bal Xwedayê we ve ye, vêca ya ku we (li dinyayê) kirî dê ji we re bibêje. Bi rastî Xwedê, bi ya di dilan de veşartî dizane.

**8**- Dema ku mirov dikeve tengezariyê, li Xwedayê xwe vedigere û jê lavelavê dike. Paşê dema Xwedê qenciyekê pê bike, ew wê lavelava ku berê ji Xwedê dikir, ji bîr dike û jê re hevpişkan çêdike da ku mirovan ji riya wî bixe. Bibêje: Bi vê kufr û nankoriya xwe hinekî xweş bijî, bi rastî tu her ji xelkên dojehê yî!

**9**- Erê ma ew kesê taetkar ku bi şev şevnimêjan dike, ji (ezabê) axîretê ditirse û dilovaniya Xwedayê xwe hêvî dike, çêtir û birûmetir e (yan ew ê ku kafir bûye)? Bibêje: Ma ew kesên ku (bi erka xwe) dizanin û ew kesên ku (pê) nizanin qet dibin wekhev? Bi rastî tenê yên aqilmend jê ders û îbret werdigrin.

**10**- Bibêje: Gelî bendeyên ku bawerî anîne! Ji ezabê Xwedayê xwe (bi kirina taetê) xwe biparêzin. Ji bo yên ku li vê dinyayê qenciyê dikin bihişt heye. Erda Xwedê Teala fireh e (nexwe ji nava kufr û ficûrê derkevin bal welatekî ku hûn bikarin perestiya Xwedayê xwe bikin). Bêguman mukafata sebirkêşan bêhesab tê dayîn.

وَاِنَّهُ لَعِلْمٌ لِلسَّاعَةِ فَلَا تَمْتَرُنَّ بِهَا وَاتَّبِعُونِ هٰذَا صِرَاطٌ
مُسْتَقِيمٌ ﴿٦١﴾ وَلَا يَصُدَّنَّكُمُ الشَّيْطَانُ اِنَّهُ لَكُمْ عَدُوٌّ مُبِينٌ
﴿٦٢﴾ وَلَمَّا جَٓاءَ عِيسٰى بِالْبَيِّنَاتِ قَالَ قَدْ جِئْتُكُمْ بِالْحِكْمَةِ
وَلِاُبَيِّنَ لَكُمْ بَعْضَ الَّذٖى تَخْتَلِفُونَ فٖيهِ فَاتَّقُوا اللّٰهَ
وَاَطٖيعُونِ ﴿٦٣﴾ اِنَّ اللّٰهَ هُوَ رَبّٖى وَرَبُّكُمْ فَاعْبُدُوهُ هٰذَا صِرَاطٌ
مُسْتَقٖيمٌ ﴿٦٤﴾ فَاخْتَلَفَ الْاَحْزَابُ مِنْ بَيْنِهِمْ فَوَيْلٌ لِلَّذٖينَ
ظَلَمُوا مِنْ عَذَابِ يَوْمٍ اَلٖيمٍ ﴿٦٥﴾ هَلْ يَنْظُرُونَ اِلَّا السَّاعَةَ
اَنْ تَاْتِيَهُمْ بَغْتَةً وَهُمْ لَا يَشْعُرُونَ ﴿٦٦﴾ اَلْاَخِلَّٓاءُ يَوْمَئِذٍ بَعْضُهُمْ
لِبَعْضٍ عَدُوٌّ اِلَّا الْمُتَّقٖينَ ﴿٦٧﴾ يَا عِبَادِ لَا خَوْفٌ عَلَيْكُمُ
الْيَوْمَ وَلَٓا اَنْتُمْ تَحْزَنُونَ ﴿٦٨﴾ اَلَّذٖينَ اٰمَنُوا بِاٰيَاتِنَا وَكَانُوا
مُسْلِمٖينَ ﴿٦٩﴾ اُدْخُلُوا الْجَنَّةَ اَنْتُمْ وَاَزْوَاجُكُمْ تُحْبَرُونَ
﴿٧٠﴾ يُطَافُ عَلَيْهِمْ بِصِحَافٍ مِنْ ذَهَبٍ وَاَكْوَابٍ وَفٖيهَا
مَا تَشْتَهٖيهِ الْاَنْفُسُ وَتَلَذُّ الْاَعْيُنُ وَاَنْتُمْ فٖيهَا خَالِدُونَ ﴿٧١﴾
وَتِلْكَ الْجَنَّةُ الَّتٖى اُورِثْتُمُوهَا بِمَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ
﴿٧٢﴾ لَكُمْ فٖيهَا فَاكِهَةٌ كَثٖيرَةٌ مِنْهَا تَاْكُلُونَ ﴿٧٣﴾

**61**- Bêguman (nazilbûna) Îsa ji bo qiyametê nîşan û zanînek e. Zinhar der barê qiyametê de nekevin gumanê. (Ya Muhemmed! Ji wan re bibêje:) Li dû min werin. Bêguman ev (a ku ji we re dibêjim) riya rast û durist e.

Îsa (s) di paşiya zemanî de dê ji asîmên were xwarê û nazilbûna wî dê bibe elametek ji bo Qiyametê. Peyxember wisa ferman kiriye: "Nêzîk e ku Îsayê kurê Meryemê wek hakimekî dadmend dakeve nava we." (Buxarî)

**62**- Zinhar, bila Pelîd we (ji dînê Xwedê) venegerîne! Bêguman ew ji we re neyarekî aşkera ye.

**63**- Gava Îsa delîl û mucîze anîn, ji wan re got: Bêguman ez bi pêxemberî ji we re hatime, da ku hinekî ji yên ku hûn tê de bi hev ketin ji we re aşkera bikim. Vêca hay (ji helal û heramê) Xwedê hebin û bi gotina min bikin.

**64**- Bêguman Ellah Teala, perwerdegarê min û perwerdegarê we ye. Nexwe îbadeta wî bikin. Ha ev riyeke rast û durist e.

**65**- Vêca deste û komên îsraîliyan (der barê Îsa de) di nava xwe de bi hev ketin. Ji ber ezabê rojeke cansoj wax li halên zaliman!

**66**- Ma ew (desteyên bihevketin) ji bilî ku ji nişka ve qiyamet bi ser wan de were pê ve, ew çavnêriya çi dikin? Ew tênagihîjin ku xwe jê re amade jî bikin.

**67**- Wê rojê, ji bilî yên teqwadar, hemû dost û hogir ji hev re dijmin û neyar in.

**68**- (Xweda dibêje:) Gelî bendeyên min! Îro li ser we tirs tune ye û hûn ê xemgîn jî nebin.

**69**- Ew bendeyên ku wan bi ayetên me bawerî aniye û ji Xweda re berdest bûne...

**70**- Hûn û hevjînên xwe dê bi qedir û dilşadî têkevin bihiştê!

**71**- Li ser wan (xwarin û vexwarin) bi firaq û qedehên zêrîn tên gerandin. Ji bo wan a ku dilên wan dixwaze û çavên wan pê zewqê dibîne, heye. Hûn ê her û her li wir bimînin.

**72**- Ha ev bihişta ku we mîras wergirtiye, xelata emelê we ye.

**73**- Tê de ji bo we pir pir fêkî hene ku hûn ê ji wan bixwin.

إِنَّ الْمُجْرِمِينَ فِي عَذَابِ جَهَنَّمَ خَالِدُونَ ﴿٧٤﴾ لَا يُفَتَّرُ عَنْهُمْ وَهُمْ
فِيهِ مُبْلِسُونَ ﴿٧٥﴾ وَمَا ظَلَمْنَاهُمْ وَلٰكِنْ كَانُوا هُمُ الظَّالِمِينَ
﴿٧٦﴾ وَنَادَوْا يَا مَالِكُ لِيَقْضِ عَلَيْنَا رَبُّكَ قَالَ إِنَّكُمْ مَاكِثُونَ
﴿٧٧﴾ لَقَدْ جِئْنَاكُمْ بِالْحَقِّ وَلٰكِنَّ أَكْثَرَكُمْ لِلْحَقِّ كَارِهُونَ
﴿٧٨﴾ أَمْ أَبْرَمُوا أَمْرًا فَإِنَّا مُبْرِمُونَ ﴿٧٩﴾ أَمْ يَحْسَبُونَ أَنَّا لَا نَسْمَعُ
سِرَّهُمْ وَنَجْوٰيهُمْ بَلٰى وَرُسُلُنَا لَدَيْهِمْ يَكْتُبُونَ ﴿٨٠﴾ قُلْ إِنْ
كَانَ لِلرَّحْمٰنِ وَلَدٌ فَأَنَا أَوَّلُ الْعَابِدِينَ ﴿٨١﴾ سُبْحَانَ رَبِّ السَّمٰوَاتِ
وَالْأَرْضِ رَبِّ الْعَرْشِ عَمَّا يَصِفُونَ ﴿٨٢﴾ فَذَرْهُمْ يَخُوضُوا وَيَلْعَبُوا
حَتّٰى يُلَاقُوا يَوْمَهُمُ الَّذِي يُوعَدُونَ ﴿٨٣﴾ وَهُوَ الَّذِي فِي السَّمَاءِ إِلٰهٌ
وَفِي الْأَرْضِ إِلٰهٌ وَهُوَ الْحَكِيمُ الْعَلِيمُ ﴿٨٤﴾ وَتَبَارَكَ الَّذِي لَهُ مُلْكُ
السَّمٰوَاتِ وَالْأَرْضِ وَمَا بَيْنَهُمَا وَعِنْدَهُ عِلْمُ السَّاعَةِ وَإِلَيْهِ
تُرْجَعُونَ ﴿٨٥﴾ وَلَا يَمْلِكُ الَّذِينَ يَدْعُونَ مِنْ دُونِهِ الشَّفَاعَةَ
إِلَّا مَنْ شَهِدَ بِالْحَقِّ وَهُمْ يَعْلَمُونَ ﴿٨٦﴾ وَلَئِنْ سَأَلْتَهُمْ مَنْ خَلَقَهُمْ
لَيَقُولُنَّ اللّٰهُ فَأَنّٰى يُؤْفَكُونَ ﴿٨٧﴾ وَقِيلِهِ يَا رَبِّ إِنَّ هٰؤُلَاءِ قَوْمٌ
لَا يُؤْمِنُونَ ﴿٨٨﴾ فَاصْفَحْ عَنْهُمْ وَقُلْ سَلَامٌ فَسَوْفَ يَعْلَمُونَ ﴿٨٩﴾



**74**- Bêguman gunehkarên kafir her û her dê di ezabê dojehê de bin.

**75**- Ezab li ser wan dê qet neyê sivikkirin, ew di nav ezab de dê hêviya xwe ji xelasbûnê bibirin.

**76**- Me li wan zilm nekiriye. Lê belê bes ew bi xwe zalim in.

**77**- Ew gazî dergehvanê dojehê dikin: Ey Malik! Bila Xwedayê te hukmê mirinê li me bibire! Malik jî dê ji wan re bibêje: Bêguman hûn ê wiha bimînin!

**78**- Sond be, Me heqî (dînê tewhîdê) ji we re şand. Lê belê pirên we ji heqiyê hez nakin.

**79**- Belkî wan (muşrikan, bi kuştina pêxember) biryarek daye. Vêca bi rastî me jî biryar (bi pûçkirina plana wan) daye.

**80**- Yan jî, ji wan we ye ku em peyva wan a bi dizî û aşkera nabihîzin? Belê, em wê dibihîzin û qasidên me yên ku li cem wan e, wê dinivîsin.

**81**- Bibêje: Eger ji Xwedayê rehman re zarok hebûna, teqez ez ê bibûma pêşiyê perestkaran.

**82**- Xwedayê erd û asîmanan û Xwedayê Erş ji saloxdayîna muşrikan teqez pak û dûr e.

**83**- Tu wan bihêle di rewşa wan de, bila xwe di pûçiyê de berdin û bi dinyaya xwe dilxweş bibin, heyanî ku çav li wê roja xwe bikevin a ku soza wê ji wan re hatiye dayîn.

**84**- Ellah Teala ye, yê ku li asîmanan babetî îbadetê û li erdê jî babetî îbadetê. Her ew e yê (di kar û barê xwe de) karbicih, ê zana.

**85**- Ew Xwedayê ku xwedanî û rêveberiya erd û asîmanan û yên di navbera wan de, jo wî ye; pîroz û bilind e. Her li cem wî ye zanîna (bi roja) qiyametê û hûn ê lê bêne vegerandin.

**86**- Ew ên ku di şûna Ellah Teala de îbadeta wan tê kirin ew nikarin mehdera tu kesî bikin. Lê belê yê ku bi zanebûn bawerî bi dînê heq bîne û şahidiyê jê re bide, ew cuda ye.

**87**- Sond be, eger tu ji wan bipirsî kê ew afirandine? Teqez dê bibêjin Ellah Teala. Nexwe çawa ew berê xwe ji îbadeta Ellah Teala diguherînin?

**88**- Pêxember got: Xwedayê min! Ev miletekî wisa ye ku bawerî nayînin.

**89**- Vêca tu dev ji wan berde û bibêje: Bi rêka xwe ve herin. Paşê hûn ê (encama gunehên xwe) bizanin!

سُورَةُ الدُّخَانِ مَكِّيَّةٌ وَهِىَ تِسْعٌ وَخَمْسُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحٖيمِ

حٰمٓ ﴿١﴾ وَالْكِتَابِ الْمُبٖينِ ﴿٢﴾ اِنَّٓا اَنْزَلْنَاهُ فٖى لَيْلَةٍ مُبَارَكَةٍ اِنَّا كُنَّا
مُنْذِرٖينَ ﴿٣﴾ فٖيهَا يُفْرَقُ كُلُّ اَمْرٍ حَكٖيمٍ ﴿٤﴾ اَمْرًا مِنْ عِنْدِنَا اِنَّا كُنَّا
مُرْسِلٖينَ ﴿٥﴾ رَحْمَةً مِنْ رَبِّكَ اِنَّهُ هُوَ السَّمٖيعُ الْعَلٖيمُ ﴿٦﴾ رَبِّ
السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَمَا بَيْنَهُمَا اِنْ كُنْتُمْ مُوقِنٖينَ ﴿٧﴾ لَٓا اِلٰهَ اِلَّا
هُوَ يُحْيٖى وَيُمٖيتُ رَبُّكُمْ وَرَبُّ اٰبَٓائِكُمُ الْاَوَّلٖينَ ﴿٨﴾ بَلْ هُمْ
فٖى شَكٍّ يَلْعَبُونَ ﴿٩﴾ فَارْتَقِبْ يَوْمَ تَأْتِى السَّمَٓاءُ بِدُخَانٍ مُبٖينٍ
﴿١٠﴾ يَغْشَى النَّاسَ هٰذَا عَذَابٌ اَلٖيمٌ ﴿١١﴾ رَبَّنَا اكْشِفْ عَنَّا الْعَذَابَ
اِنَّا مُؤْمِنُونَ ﴿١٢﴾ اَنّٰى لَهُمُ الذِّكْرٰى وَقَدْ جَٓاءَهُمْ رَسُولٌ مُبٖينٌ
﴿١٣﴾ ثُمَّ تَوَلَّوْا عَنْهُ وَقَالُوا مُعَلَّمٌ مَجْنُونٌ ﴿١٤﴾ اِنَّا كَاشِفُوا الْعَذَابِ
قَلٖيلًا اِنَّكُمْ عَٓائِدُونَ ﴿١٥﴾ يَوْمَ نَبْطِشُ الْبَطْشَةَ الْكُبْرٰى
اِنَّا مُنْتَقِمُونَ ﴿١٦﴾ وَلَقَدْ فَتَنَّا قَبْلَهُمْ قَوْمَ فِرْعَوْنَ وَجَٓاءَهُمْ
رَسُولٌ كَرٖيمٌ ﴿١٧﴾ اَنْ اَدُّٓوا اِلَیَّ عِبَادَ اللّٰهِ اِنّٖى لَكُمْ رَسُولٌ اَمٖينٌ ﴿١٨﴾

## SÛREYÊ DÛXAN

Sûreyê Dûxan 59 (pêncî û neh) ayet e û li Mekkeyê daketiye. Navê sûre ji kelîmeya Dûxan hatiye ku di ayeta 10'em de derbas bûye û bi maneya dû ye.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

**1- Ha. Mîm.**

2- Sond be, bi kitêba ronak û ronker.

3- Bi rastî me ew di şeveke pîroz de aniye xwarê. Bêguman em bi wê (mirovan) hişyar dikin û ditirsînin.

4- Di wê şevê de, her kar û barên xwedanhîkmet tên veqetandin...

5- Ku ew fermaneke ji cem Me ye. Bêguman em in ê ku pêxemberan dişînin.

6- (Ev pêxember û kitêb) rehmetek e ji cem Xwedayê te. Bêguman, her Ew e yê bihîzer, ê zana.

7- Ew ê ku Xwedayê erd û asîmanan û Xwedayê yên di navbera wan de ye. Eger hûn bawer dikin (nexwe her îbadeta wî bikin).

8- Ji bilî Ellah Teala tu me'bûdê bi heqî nîn in. Ew sax dike û ew dimirîne. Ew Xwedayê we û Xwedayê bav û bapîrên we yên pêşî ye.

9- Belkî ew (muşrik) di gumanê de ne, ew ji xwe re dileyîzin (û bawerî nayînin).

10- Vêca tu çavnêriya (ezabê) wê rojê bike ku wê rojê asîman dûkeleke aşkera tîne.

11- Ew dûkel mirovan dide nav xwe (û li wan tê hev). Ha ev ezabekî dijwar û bijan e.

12- (Hingê ew dê bibêjin:) Xwedayê me! Ezab ji ser me bide alî, bi rastî me îman anî.

13- Ev ji ku hate bîra wan? Digel ku pêxemberekî rastiyê aşkera dike ji bo wan hatibû (û wan bawerî pê ne anîbû).

14- Piştre wan berê xwe ji pêxember guherand û gotin: Ev hînkiriyekî dîn e.

15- Em ê demekê ezab ji ser we rakin, lê belê hûn ê dîsa (li halê xwe yê berê) vegerin.

16- Roja qiyametê em ê wan bi hingaftineke tûj û mezin bihingêvin. Teqez em ê tol û heyfê li wan vekin.

17- Sond be, me beriya wan gelê Firewn jî ceriband. Ji wan re pêxemberekî birûmet hat.

18- (Ji wan re wiha got:) Gelî bendeyên Ellah Teala! Werin bi gotina min bikin! Bi rastî ez pêxemberekî pêbawer im ku ji we re hatime şandin.

وَاَنْ لَا تَعْلُوا عَلَى اللّٰهِ اِنّ۪ٓي اٰت۪يكُمْ بِسُلْطَانٍ مُب۪ينٍ ﴿١٩﴾ وَاِنّ۪ي عُذْتُ
بِرَبّ۪ي وَرَبِّكُمْ اَنْ تَرْجُمُونِ ﴿٢٠﴾ وَاِنْ لَمْ تُؤْمِنُوا ل۪ي فَاعْتَزِلُونِ
﴿٢١﴾ فَدَعَا رَبَّهُٓ اَنَّ هٰٓؤُلَٓاءِ قَوْمٌ مُجْرِمُونَ ﴿٢٢﴾ فَاَسْرِ بِعِبَاد۪ي
لَيْلًا اِنَّكُمْ مُتَّبَعُونَ ﴿٢٣﴾ وَاتْرُكِ الْبَحْرَ رَهْوًاۜ اِنَّهُمْ جُنْدٌ مُغْرَقُونَ
﴿٢٤﴾ كَمْ تَرَكُوا مِنْ جَنَّاتٍ وَعُيُونٍ ﴿٢٥﴾ وَزُرُوعٍ وَمَقَامٍ كَر۪يمٍ ﴿٢٦﴾
وَنَعْمَةٍ كَانُوا ف۪يهَا فَاكِه۪ينَ ﴿٢٧﴾ كَذٰلِكَ وَاَوْرَثْنَاهَا قَوْمًا اٰخَر۪ينَ
﴿٢٨﴾ فَمَا بَكَتْ عَلَيْهِمُ السَّمَٓاءُ وَالْاَرْضُ وَمَا كَانُوا مُنْظَر۪ينَ
﴿٢٩﴾ وَلَقَدْ نَجَّيْنَا بَن۪ٓي اِسْرَٓأ۪يلَ مِنَ الْعَذَابِ الْمُه۪ينِ ﴿٣٠﴾ مِنْ فِرْعَوْنَ
اِنَّهُ كَانَ عَالِيًا مِنَ الْمُسْرِف۪ينَ ﴿٣١﴾ وَلَقَدِ اخْتَرْنَاهُمْ عَلٰى عِلْمٍ
عَلَى الْعَالَم۪ينَ ﴿٣٢﴾ وَاٰتَيْنَاهُمْ مِنَ الْاٰيَاتِ مَا ف۪يهِ بَلٰٓؤٌا مُب۪ينٌ ﴿٣٣﴾
اِنَّ هٰٓؤُلَٓاءِ لَيَقُولُونَ ﴿٣٤﴾ اِنْ هِيَ اِلَّا مَوْتَتُنَا الْاُو۫لٰى وَمَا نَحْنُ
بِمُنْشَر۪ينَ ﴿٣٥﴾ فَأْتُوا بِاٰبَٓائِنَٓا اِنْ كُنْتُمْ صَادِق۪ينَ ﴿٣٦﴾ اَهُمْ خَيْرٌ
اَمْ قَوْمُ تُبَّعٍ وَالَّذ۪ينَ مِنْ قَبْلِهِمْ اَهْلَكْنَاهُمْ اِنَّهُمْ كَانُوا مُجْرِم۪ينَ
﴿٣٧﴾ وَمَا خَلَقْنَا السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ وَمَا بَيْنَهُمَا لَاعِب۪ينَ ﴿٣٨﴾
مَا خَلَقْنَاهُمَٓا اِلَّا بِالْحَقِّ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَهُمْ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٣٩﴾
اِنَّ

**19-** Xwe li hemberî Xweda (bi neîtaetê) mezin nedêrin. Bi rastî min ji bo we (li ser pêxemberiya xwe) delîl û belgeyeke aşkera anî.

**20-** Ez xwe diavêjim ber hefza Xwedayê xwe û Xwedayê we da ku hûn min bi keviran nekujin.

**21-** Eger hûn ji min bawer nakin, nexwe ji min dûr bibin.

**22-** Li hemberî vê, Mûsa gazî Xwedayê xwe kir, got: Ev ên han qewmekî gunehkar in.

**23-** (Ellah Teala jê re got:) Nexwe bendeyên min (ên ku wan bawerî anî) bi şev (ji Misrê) derîne, bêguman ew ê bi dûv we bikevin.

**24-** Bi siteh ji deryayê derbas be û wê di rewşa wê de bihêle. Bêguman ew leşker dê di avê de bên xeniqandin.

**25-** Wan li dûv xwe gelek baxçe û kaniyên (bêxwedî) hiştin.

**26-** Zewiyên çandinî û koşkên xweşik.

**27-** Pir nîmetên ku di nav wan de kêf û şahî dikirin (hiştin)!

**28-** Ha bi vî awayî (ez ceza didim wan) û me miletekî din kire warisê wan.

**29-** Erd û asîman ji bo wan negirîn û muhlet (a tobekirinê) jî ji wan re nehate dayîn.

**30-** Sond be, Me zarokên Îsraîl ji wî ezabê riswaker xelas kirin.

**31-** Ji Firewn (rizgar kirin), lewra ew zordarekî tixûbbihêr bû.

**32-** Sond be, Me zarokên Îsraîl bi zanîn di ser xelkê (dema wan) re girtin.

**33-** Me hin mucîze dane wan ku di wan de ceribandineke aşkere hebû.

**34-** Bi rastî ev ên han dibêjin:

**35-** Ji mirina me ya pêşîn pê ve tiştekî din nîn e û em ê (piştî mirinê) neyêne saxkirin.

**36-** (Gotin:) Vêca eger hûn rast dibêjin, de ka bav û bapîrên me bînin.

**37-** Ma ev (muşrik) xurttir in, an jî gelê 'Tubbe'yê û gelên beriya wan jî? Ji ber ku gunehkar bûn me ew tev birin helakê.

**38-** Me erd, asîman û yên di navbera wan de mişêya neafirandine.

**39-** Me ew her bi heqiyê afirandine (ku ew yekîtî û qudreta me nîşan didin), lê belê pirên wan (vê rastiyê) nizanin.

إِنَّ يَوْمَ الْفَصْلِ مِيقَاتُهُمْ اَجْمَعِينَ ﴿٤٠﴾ يَوْمَ لَا يُغْنِى مَوْلًى
عَنْ مَوْلًى شَيْـًٔا وَلَا هُمْ يُنْصَرُونَ ﴿٤١﴾ اِلَّا مَنْ رَحِمَ اللّٰهُ
اِنَّهُ هُوَ الْعَزِيزُ الرَّحِيمُ ﴿٤٢﴾ اِنَّ شَجَرَتَ الزَّقُّومِ ﴿٤٣﴾ طَعَامُ
الْاَثِيمِ ﴿٤٤﴾ كَالْمُهْلِ يَغْلِى فِى الْبُطُونِ ﴿٤٥﴾ كَغَلْيِ الْحَمِيمِ
﴿٤٦﴾ خُذُوهُ فَاعْتِلُوهُ اِلٰى سَوَاءِ الْجَحِيمِ ﴿٤٧﴾ ثُمَّ صُبُّوا
فَوْقَ رَاْسِهِ مِنْ عَذَابِ الْحَمِيمِ ﴿٤٨﴾ ذُقْ اِنَّكَ اَنْتَ الْعَزِيزُ
الْكَرِيمُ ﴿٤٩﴾ اِنَّ هٰذَا مَا كُنْتُمْ بِهِ تَمْتَرُونَ ﴿٥٠﴾ اِنَّ الْمُتَّقِينَ
فِى مَقَامٍ اَمِينٍ ﴿٥١﴾ فِى جَنَّاتٍ وَعُيُونٍ ﴿٥٢﴾ يَلْبَسُونَ مِنْ سُنْدُسٍ
وَاِسْتَبْرَقٍ مُتَقَابِلِينَ ﴿٥٣﴾ كَذٰلِكَ وَزَوَّجْنَاهُمْ بِحُورٍ عِينٍ
﴿٥٤﴾ يَدْعُونَ فِيهَا بِكُلِّ فَاكِهَةٍ اٰمِنِينَ ﴿٥٥﴾ لَا يَذُوقُونَ فِيهَا
الْمَوْتَ اِلَّا الْمَوْتَةَ الْاُولٰى وَوَقٰيهُمْ عَذَابَ الْجَحِيمِ ﴿٥٦﴾
فَضْلًا مِنْ رَبِّكَ ذٰلِكَ هُوَ الْفَوْزُ الْعَظِيمُ ﴿٥٧﴾ فَاِنَّمَا يَسَّرْنَاهُ
بِلِسَانِكَ لَعَلَّهُمْ يَتَذَكَّرُونَ ﴿٥٨﴾ فَارْتَقِبْ اِنَّهُمْ مُرْتَقِبُونَ ﴿٥٩﴾

سُورَةُ الْجَاثِيَةِ مَكِّيَّةٌ وَهِيَ
سَبْعٌ وَثَلٰثُونَ اٰيَةً

**40**- Bêguman roja jihevcudabûnê (ya ku baş û nebaş ji hev cuda dibin) civana wan hemûyan e.

**41**- Wê rojê, dostek nikare feydeyê bide dostekî, arîkariya wan jî dê neyê kirin.

**42**- Ji bilî yên ku Xwedê qencî li wan kiriye (ew mehderiya hev dikin). Bêguman Xweda Teala, her ew e yê desthilat, ê dilovîn.

**43**- Bêguman dara zeqqûmê...

**44**- Xwarina gunehkaran e.

**45**- Eynî wekî hesinê helandî di zikên wan de dikele.

**46**- Her wiha wekî kela ava kelî ye.

**47**- (Xweda ferman li zebaniyan dike:) wî bigirin, bikêşin nîvê dojehê!

**48**- Piştre ji ezabê dojehê (ava kelî) bi ser wî de birijînin.

**49**- (Jê re dibêjin:) De heydê (ezab) tehm bike! Lewra tu desthilat û birûmet bûyî!

50- Bêguman ev ezab, ew ê ku we der barê wî de guman dikir.

**51**- Her çî ku mutteqî ne, bi rastî ew li cihekî ewle ne.

52- Di nav bexçeyan de û li ser kaniyan in...

53- Cilên hevrîşimê tenik û etlesê beriqok li xwe dikin û li pêşberî hev rûdinin.

**54**- Her wiha me ew bi horiyên çavgir ên çavbelek re kirin hevjîn.

**55**- Li bihiştê her texlîtên fêkî (yên ku dilên wan bibijiyê) dixwazin, di nav ewlehiyê de ne.

**56**- Ji mirina pêşîn pê ve ew ê mirineke din neçêjin û Xwedê ew ji ezabê dojehê parastine (û ew gihîştine jiyana her û herî).

**57**- Ev dayîna han qenciyek e ji Xwedayê te û teqez ew e xelasiya mezin.

**58**- Me ev Quran bi zimanê te hinartiye û hêsan kiriye da ku ew pê şîret wergirin.

**59**- (Ya Muhemmed!) Vêca tu çavnêriyê (li ezabê wan) bike, ew jî çavnêriya (şikestin û têkçûna) te dikin.



## SÛREYÊ CASIYE

Sûreyê Casiye 37 (sih û heft) ayet e. Li Mekkê daketiye. Sûre, navê xwe ji bêjeya Casiye girtiye ku di ayeta 28'em de derbas bûye û bi mehneya "çokdayîn, kombûyîn" e.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

1- **Ha. Mîm.**

2- Ev Quran ji cem Xwedê Teala ve hatiye hinartin, ew ê ku (di kar û barê xwe de) desthilat ê karbicih e.

3- Bêguman di erd û asîmanan de, ji bo bawermendan gelek ayet hene (ku hêz û qudreta Xwedê Teala nîşan didin).

4- Bêguman di afirandina we de û di zindîyên ku li ser erdê belav bûne de, ji bo miletekî ku ji dil bawer bike, gelek îbret hene.

5- Bêguman di lipeyhevanîn û guhertina şev û rojê de, di wê barana ku Xwedê Teala ew ji asîmên daxistiye, vêca ku bi wê baranê erda mirî sax û hêşîn dike û di anîna bayê ji hemû aliyan ve, ji bo miletekî ku fehm bike, pir ayet hene.

6- Ha ev ayetên Xwedê Teala ne. Em wan bi heqî û rastî ji te re dixwînin. Êdî ew (muşrik) piştî ku bawerî bi Xwedê Teala û ayetên wî neyînin, ew ê bi kîjan gotinê bawerî bînin?

7- Wax li halê her derewbêjê gunehkar!

8- Ku ew ayetên Xwedê Teala yên ku jê re têne xwendin seh dike, piştre xwe mezin didêre her wekî ku ew nebihîstine (û li ser kufra xwe) asê dibe, vêca mizgîniya ezabekî dijwar bidê!

9- Dema ji ayetên me tiştekî fêr dibe henekê xwe bi wan dike. Ha ji bo wan ezabekî riswaker heye.

10- Cehenem li pêşiya wan e. Tiştên ku wan bi dest xistin û ew ên ku wan di şûna Xwedê Teala de ji xwe re kirine piştevan jî nikarin tu feydeyekê bidin wan û ji bo wan her ezabekî mezin heye.

11- Ha ev Quran, serkaniya hîdayetê ye. Herçî ew ên ku ayetên Xwedayê xwe înkar kirin, ji wan re ezabekî biêş û dijwar heye.

12- Xwedê ye, yê ku derya ji bo we misixur kiriye da ku keştî bi destûra wî tê de bikişin û ku hûn ji kerema wî (bi bazirganiyê) li rizqê xwe bigerin û da ku hûn wî bişêkirînin.

13- Xwedê ji kerema xwe çi li erd û li asîmanan hene tev ji bo we bindest kirine. Teqez di vê de ji bo miletekî ku bifikirin pir ayet hene (ku qudret û yekîtiya Xwedê Teala nîşan didin).

قُلْ لِلَّذٖينَ اٰمَنُوا يَغْفِرُوا لِلَّذٖينَ لَا يَرْجُونَ اَيَّامَ اللّٰهِ لِيَجْزِيَ
قَوْمًا بِمَا كَانُوا يَكْسِبُونَ ﴿١٤﴾ مَنْ عَمِلَ صَالِحًا فَلِنَفْسِهٖ
وَمَنْ اَسَاۤءَ فَعَلَيْهَا ثُمَّ اِلٰى رَبِّكُمْ تُرْجَعُونَ ﴿١٥﴾ وَلَقَدْ اٰتَيْنَا
بَنٖٓي اِسْرَاۤئٖلَ الْكِتَابَ وَالْحُكْمَ وَالنُّبُوَّةَ وَرَزَقْنَاهُمْ مِنَ الطَّيِّبَاتِ
وَفَضَّلْنَاهُمْ عَلَى الْعَالَمٖينَ ﴿١٦﴾ وَاٰتَيْنَاهُمْ بَيِّنَاتٍ مِنَ الْاَمْرِ فَمَا
اخْتَلَفُوا اِلَّا مِنْ بَعْدِ مَا جَاۤءَهُمُ الْعِلْمُ بَغْيًا بَيْنَهُمْ اِنَّ رَبَّكَ
يَقْضٖي بَيْنَهُمْ يَوْمَ الْقِيٰمَةِ فٖيمَا كَانُوا فٖيهِ يَخْتَلِفُونَ ﴿١٧﴾
ثُمَّ جَعَلْنَاكَ عَلٰى شَرٖيعَةٍ مِنَ الْاَمْرِ فَاتَّبِعْهَا وَلَا تَتَّبِعْ اَهْوَاۤءَ
الَّذٖينَ لَا يَعْلَمُونَ ﴿١٨﴾ اِنَّهُمْ لَنْ يُغْنُوا عَنْكَ مِنَ اللّٰهِ شَيْـًٔا
وَاِنَّ الظَّالِمٖينَ بَعْضُهُمْ اَوْلِيَاۤءُ بَعْضٍ وَاللّٰهُ وَلِيُّ الْمُتَّقٖينَ
﴿١٩﴾ هٰذَا بَصَاۤئِرُ لِلنَّاسِ وَهُدًى وَرَحْمَةٌ لِقَوْمٍ يُوقِنُونَ ﴿٢٠﴾
اَمْ حَسِبَ الَّذٖينَ اجْتَرَحُوا السَّيِّـَٔاتِ اَنْ نَجْعَلَهُمْ كَالَّذٖينَ
اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ سَوَاۤءً مَحْيَاهُمْ وَمَمَاتُهُمْ سَاۤءَ مَا
يَحْكُمُونَ ﴿٢١﴾ وَخَلَقَ اللّٰهُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ بِالْحَقِّ
وَلِتُجْزٰى كُلُّ نَفْسٍ بِمَا كَسَبَتْ وَهُمْ لَا يُظْلَمُونَ ﴿٢٢﴾

14- Ji bawermendan re bibêje: Bila wan efû bikin ew ên ku çavnêriya karesatên Xwedê nakin (dema ku azar didana bawermendan), da ku Xwedê qewmekî bi sebûnet kar û kiryarên ku kirin ceza bike.

15- Kî ku karekî qenc bike ew ji xwe re dike û kî jî karekî neqenc bike ew li xwe dike. Piştre hûn ê li Xwedayê xwe bên vegerandin.

16- Sond be Me Tewrat, desthilatî û pêxemberî daye Benî Îsraîlîyan û Me ew bi tiştê pak û helal rizqdar kirin û me ew di ser xelkê (heyama wan) re girtin.

17- Me der barê dîn de delîlên aşkera dane wan. Lê belê ew piştî ku zanîn (bi navgîna pêxemberên wan) ji wan re hat, ji çavnebariya xwe bi hev ketin. Bêguman Xwedayê te roja qiyametê dê di navbera wan de der barê ya ku ew tê de bi hev ketin, hukim bike.

18- Piştre me tu der barê dîn de li ser şerîeteke (rêbazeke) aşkera danî. Vêca wê riyê bigire û bi dû dilxwaziya nezanan nekeve.

19- Bêguman ew (nezan), ji ezabê Xwedayê te nikarin tiştekî ji te bidin alî. Bêguman zalim dost û piştevanê hev in. Xweda jî heval û arîkarê mutteqiyan e.

20- Ev (Quran), ji bo mirovan têgihînên qelbî ye, ev (Quran), serwextî û dilovanî ye ji bo civateke ku (bi rastiya Quranê) ji dil bawerî tînin.

21- Erê ma ew ên ku guneh kirin, guman dikin ku em ê wan û yên ku bawerî anî û karên qenc kirin, di saxî û mirinê wan wekhev bigirin? Çi pîs hukm e ew dikin (ku baş û xeraban tînin yek rêzê)!

22- Xwedê Teala erd û asîman bi heqî afirandine. Bi vî awayî her kes dê li gorî qezenca xwe bête xelat û celatkirin, tu zordarî jî li wan nayê kirin.

Li gorî ku hatiye ragihandin, Ebû Cehil şevekê li Ke'bê digeriya û Welîd kurê Mûxîre jî pê re bû. Her du di bara Pêxember de (s) de axivîn. Ebû Cehil got: Ez bi Xwedê sond dixwim ku ez dizanim Muhemmed rast dibêje. Welîdî got: De bes e lo! Çi tiştî ev yek nîşanî te daye? Ebû Cehil got: Ya Bavê Ebdeşems! Di biçûkatiya wî de me jê re digot, "Sadîqul- Emîn" Yanî Rastgoyê Pêbawer. Çi gava eqlê wî stewiyaye û gihaye kemala xwe em jê re dibêjin, derewgoyê xayîn!! Ez bi Xwedê sond dixwim ku ez dizanim ew rastgo ye. Welîdî got: Naxwe çi tişt e, ya ku nahêle tu wî rast bidêrî û îmanê pê bînî? Ebû Cehil got: Keçên qureyşiyan di bara min de dê bibêjin; daye pey sêwiyê Ebû Talib ku ev yek ji bo min kêmayî ye. Ez bi Lat û Uzzayî kim ez ê hîç li pey wî neçim. Vêca di bara wî de ew ayeta ku tê daket û rewşa wî ronî kir ku wî ji xwe re hewesa xwe kiriye îlah û ew arezûyên xwe dihebîne!!

اَفَرَاَيْتَ مَنِ اتَّخَذَ اِلٰهَهُ هَوٰيهُ وَاَضَلَّهُ اللّٰهُ عَلٰى عِلْمٍ وَخَتَمَ عَلٰى
سَمْعِهٖ وَقَلْبِهٖ وَجَعَلَ عَلٰى بَصَرِهٖ غِشَاوَةً فَمَنْ يَهْدٖيهِ مِنْ بَعْدِ اللّٰهِ اَفَلَا
تَذَكَّرُونَ ﴿٢٣﴾ وَقَالُوا مَا هِيَ اِلَّا حَيَاتُنَا الدُّنْيَا نَمُوتُ وَنَحْيَا وَمَا يُهْلِكُنَا
اِلَّا الدَّهْرُ وَمَا لَهُمْ بِذٰلِكَ مِنْ عِلْمٍ اِنْ هُمْ اِلَّا يَظُنُّونَ ﴿٢٤﴾ وَاِذَا تُتْلٰى
عَلَيْهِمْ اٰيَاتُنَا بَيِّنَاتٍ مَا كَانَ حُجَّتَهُمْ اِلَّا اَنْ قَالُوا ائْتُوا بِاٰبَائِنَا اِنْ
كُنْتُمْ صَادِقٖينَ ﴿٢٥﴾ قُلِ اللّٰهُ يُحْيٖيكُمْ ثُمَّ يُمٖيتُكُمْ ثُمَّ يَجْمَعُكُمْ اِلٰى
يَوْمِ الْقِيٰمَةِ لَا رَيْبَ فٖيهِ وَلٰكِنَّ اَكْثَرَ النَّاسِ لَا يَعْلَمُونَ ﴿٢٦﴾ وَلِلّٰهِ مُلْكُ
السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَيَوْمَ تَقُومُ السَّاعَةُ يَوْمَئِذٍ يَخْسَرُ الْمُبْطِلُونَ
﴿٢٧﴾ وَتَرٰى كُلَّ اُمَّةٍ جَاثِيَةً كُلُّ اُمَّةٍ تُدْعٰى اِلٰى كِتَابِهَا اَلْيَوْمَ تُجْزَوْنَ
مَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿٢٨﴾ هٰذَا كِتَابُنَا يَنْطِقُ عَلَيْكُمْ بِالْحَقِّ اِنَّا كُنَّا
نَسْتَنْسِخُ مَا كُنْتُمْ تَعْمَلُونَ ﴿٢٩﴾ فَاَمَّا الَّذٖينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ
فَيُدْخِلُهُمْ رَبُّهُمْ فٖي رَحْمَتِهٖ ذٰلِكَ هُوَ الْفَوْزُ الْمُبٖينُ ﴿٣٠﴾ وَاَمَّا الَّذٖينَ
كَفَرُوا اَفَلَمْ تَكُنْ اٰيَاتٖي تُتْلٰى عَلَيْكُمْ فَاسْتَكْبَرْتُمْ وَكُنْتُمْ قَوْمًا
مُجْرِمٖينَ ﴿٣١﴾ وَاِذَا قٖيلَ اِنَّ وَعْدَ اللّٰهِ حَقٌّ وَالسَّاعَةُ لَا رَيْبَ فٖيهَا قُلْتُمْ
مَا نَدْرٖي مَا السَّاعَةُ اِنْ نَظُنُّ اِلَّا ظَنًّا وَمَا نَحْنُ بِمُسْتَيْقِنٖينَ ﴿٣٢﴾

وَبَدَا لَهُمْ

**23**- Erê ka ji min re bêje, ma te ew dît, ew ê ku hewesa xwe ji xwe re kiriye îlah. Xwedê (ji bo ku tu hincet jê re nemîne) piştî zanîn gihandiyê, ew gumrah kiriya, guh û dilê wî mor kiriye û perde bi ser çavê wî de aniye. Êdî ji Xwedê pê ve kî heye ku wî bîne ser riya rast? Ma hê jî hûn tênagihîjin?!

**24**- (Muşrikan) Gotin: Jiyan tenê jiyara vê dinyayê ye, ya ku em tê de dimirin û dijîn û bes pêşdeçûna zemanî me dibe helakê. Di vê dabaşê de tu zanîna wan tune ye. Gotina wan bes guman û xeyal e.

Muşrikên ereb îdîa dikirin ku jiyan jiyana cîhanê tenê ye. Yanî: Hin kes dimirin û hin kes nû dibin û têne şûna wan, ne axiret, ne saxbûna piştî mirinê, ne hesab, ne xelat û ne jî celat tun e.

**25**- Dema ayetên me yên ronkar ji wan re tên xwendin, ji gotina ku bibêjin 'Eger hûn rastbêj in de ka bav û bapîrên me sax bikin', pê ve tu mehneya wan tune ye.

**26**- Bibêje: Xwedê Teala dê we sax bike, piştre dê we bimirîne. Piştre dê we di wê roja qiyametê de ya ku qet tê de guman tune ye we li hev bicivîne, lê belê pirên mirovan (vê) nizanin.

**27**- Xwedaniya erd û asîmanan ya Ellah Teala ye. Roja qiyamet rabe, ha wê rojê ew ên ku guhê xwe dane ya pûç û betal, dê ziyan bikin.

**28**- Roja qiyametê tu dê her umetî bibînî ku (ji tirsa hesabê xwe) çokdayî ne. Her umet bi bal deftera emelê xwe ve tên gazîkirin (û ji wan re tê gotin:) Îro hûn ê li gorî kirinên xwe bêne xelat û celatkirin!

**29**- Ev kitêba me li ser we bi rastî dibêje. Bêguman (firîşteyên) me kirinên we dinivîsîn (da ku li gorî wan em we xelat û celat bikin).

**30**- Herçî ew ên ku bawerî anîn û karên qenc kirin, Xwedayê wan, wan dixe rehma xwe. Ha ev, ew serkeftin û serfiraziya aşkera bi xwe ye.

**31**- Ew ên ku kafir bûne (ji wan re dê bê gotin:) Erê ma ayetên min ji we re nedihatin xwendin, vêca we jî xwe mezin didêra û hûn bûne civateke gunehkar?!

**32**- Dema tê gotin; bi rastî peymana Xwedê Teala heq e/rast e û di roja qiyametê de tu guman tune ye, hûn dibêjin: Em nizanin qiyamet çi ye. Lê belê bes em gumanekê dikin û em ji hatina wê ne piştrast in.

وَبَدَا لَهُمْ سَيِّـَٔاتُ مَا عَمِلُوا وَحَاقَ بِهِمْ مَا كَانُوا بِهِ يَسْتَهْزِؤُنَ ٣٣
وَقِيلَ الْيَوْمَ نَنْسٰيكُمْ كَمَا نَسِيتُمْ لِقَاءَ يَوْمِكُمْ هٰذَا وَمَاْوٰيكُمُ النَّارُ
وَمَا لَكُمْ مِنْ نَاصِرِينَ ٣٤ ذٰلِكُمْ بِاَنَّكُمُ اتَّخَذْتُمْ اٰيَاتِ اللّٰهِ هُزُوًا
وَغَرَّتْكُمُ الْحَيٰوةُ الدُّنْيَا فَالْيَوْمَ لَا يُخْرَجُونَ مِنْهَا وَلَا هُمْ يُسْتَعْتَبُونَ
٣٥ فَلِلّٰهِ الْحَمْدُ رَبِّ السَّمٰوَاتِ وَرَبِّ الْاَرْضِ رَبِّ الْعَالَمِينَ ٣٦
وَلَهُ الْكِبْرِيَاءُ فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَهُوَ الْعَزِيزُ الْحَكِيمُ ٣٧

سُورَةُ الْاَحْقَافِ مَكِّيَّةٌ وَهِيَ
خَمْسٌ وَثَلٰثُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

حٰمٓ ١ تَنْزِيلُ الْكِتَابِ مِنَ اللّٰهِ الْعَزِيزِ الْحَكِيمِ ٢ مَا خَلَقْنَا السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضَ وَمَا بَيْنَهُمَا اِلَّا بِالْحَقِّ وَاَجَلٍ مُسَمًّى وَالَّذِينَ كَفَرُوا عَمَّا اُنْذِرُوا
مُعْرِضُونَ ٣ قُلْ اَرَاَيْتُمْ مَا تَدْعُونَ مِنْ دُونِ اللّٰهِ اَرُونِي مَاذَا خَلَقُوا
مِنَ الْاَرْضِ اَمْ لَهُمْ شِرْكٌ فِي السَّمٰوَاتِ اِيتُونِي بِكِتَابٍ مِنْ قَبْلِ هٰذَا اَوْ
اَثَارَةٍ مِنْ عِلْمٍ اِنْ كُنْتُمْ صَادِقِينَ ٤ وَمَنْ اَضَلُّ مِمَّنْ يَدْعُوا مِنْ دُونِ
اللّٰهِ مَنْ لَا يَسْتَجِيبُ لَهُ اِلٰى يَوْمِ الْقِيٰمَةِ وَهُمْ عَنْ دُعَائِهِمْ غَافِلُونَ ٥

33- Cezayê neqenciyên ku wan kirî ji wan re xuya bûye û ezabê ku wan pê tinaz dikir, dor li wan girtiye.

34- Ji wan re) Tê gotin: We çawa gihîştina vê roja xwe ji bîr kiribû, eynî wisa em ê jî îro we di ezab de bihêlin! Hêwirgeha we agir e û tu arîkarê we jî tune ne (ku we ji êgir derînin)!

35- Sedema vî ezabî ev e ku we tinazên xwe bi ayetên Xwedê Teala kiriye û jiyana cîhanê hûn xapandine. Êdî îro ew ê ji êgir neyêne deranîn û (razîkirina Xwedê Teala jî) dê ji wan neyê xwestin.

36- Vêca her saloxên baş û têkûz ji bo Xwedê Teala ne, Ew ê ku perwedegarê erd û asîmanan û perwerdegarê alemê ye.

37- Di erd û asîmanan de, mezinahî û kubarî her jê re ye û Ew e yê (di kar û barê xwe de) serdest, yê karbicih.

## SÛREYÊ EHQAF

Sûreyê Ehqaf, 35 (sih û pênc) ayet e. Li Mekkê nazil bûye. Sûreyî, navê xwe ji bêjeya Ehqaf girtiye ku di ayeta 21-em de derbas bûye.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

1- **Ha. Mîm.**

2- Ev Qur'an, ji cem Xwedê ve hatiye hinartin, ew ê ku (di kar û barê xwe de) desthilat ê xwedanhikmet e.

3- Me asîman, erd û yên di navbera wan de heyî, her bi heqî û heta demeke navlêkirî aferandine. Ew ên ku kafir bûne, pişta xwe didine wê Qur'ana ku pê hatine hişyarkirin.

4- Bibêje: De ka ji min re bêjin; ew ên ku ji bilî Xwedê hûn îbadetê wan dikin nîşanî min bidin; ka di erdê de çi xuliqandine! Yan jî çi hevkariyeke wan di (aferandina) asîmanan de heye? Eger hûn rastgo ne, de ka kitêbekê ku beriya vê (Qur'anê) hatibe, yan jî berhemekê ji zanîna (pêşiyan) ji min re bînin (ku fermana muşrikiyê li we bike û ji we re bibêje, ev pût, li nik Xwedê dê mehderiya we bikin).

5- Ma ji wî yê ku ji bilî Xwedê îbadetê hin pûtan dike ku ew pût heyanî roja qiyametê ew neşên bersiva bergerîna wî bidin, rêşaştir kî heye? Ew pût haya wan ji bergerîna wan (muşrikan) jî tune ye.

وَاِذَا حُشِرَ النَّاسُ كَانُوا لَهُمْ اَعْدَٓاءً وَكَانُوا بِعِبَادَتِهِمْ كَافِرِينَ
٦ وَاِذَا تُتْلٰى عَلَيْهِمْ اٰيَاتُنَا بَيِّنَاتٍ قَالَ الَّذِينَ كَفَرُوا لِلْحَقِّ
لَمَّا جَٓاءَهُمْ هٰذَا سِحْرٌ مُبِينٌ ٧ اَمْ يَقُولُونَ افْتَرٰيهُ قُلْ اِنِ افْتَرَيْتُهُ
فَلَا تَمْلِكُونَ لِى مِنَ اللّٰهِ شَيْـًٔا هُوَ اَعْلَمُ بِمَا تُفِيضُونَ فِيهِ كَفٰى
بِهِ شَهِيدًا بَيْنِى وَبَيْنَكُمْ وَهُوَ الْغَفُورُ الرَّحِيمُ ٨ قُلْ مَا كُنْتُ
بِدْعًا مِنَ الرُّسُلِ وَمَٓا اَدْرِى مَا يُفْعَلُ بِى وَلَا بِكُمْ اِنْ اَتَّبِعُ اِلَّا
مَا يُوحٰٓى اِلَىَّ وَمَٓا اَنَا اِلَّا نَذِيرٌ مُبِينٌ ٩ قُلْ اَرَاَيْتُمْ اِنْ كَانَ مِنْ
عِنْدِ اللّٰهِ وَكَفَرْتُمْ بِهِ وَشَهِدَ شَاهِدٌ مِنْ بَنٖٓى اِسْرَٓائِيلَ عَلٰى مِثْلِهِ
فَاٰمَنَ وَاسْتَكْبَرْتُمْ اِنَّ اللّٰهَ لَا يَهْدِى الْقَوْمَ الظَّالِمِينَ ١٠ وَقَالَ الَّذِينَ
كَفَرُوا لِلَّذِينَ اٰمَنُوا لَوْ كَانَ خَيْرًا مَا سَبَقُونَٓا اِلَيْهِ وَاِذْ لَمْ يَهْتَدُوا
بِهِ فَسَيَقُولُونَ هٰذَٓا اِفْكٌ قَدِيمٌ ١١ وَمِنْ قَبْلِهِ كِتَابُ مُوسٰٓى
اِمَامًا وَرَحْمَةً وَهٰذَا كِتَابٌ مُصَدِّقٌ لِسَانًا عَرَبِيًّا لِيُنْذِرَ الَّذِينَ
ظَلَمُوا وَبُشْرٰى لِلْمُحْسِنِينَ ١٢ اِنَّ الَّذِينَ قَالُوا رَبُّنَا اللّٰهُ
ثُمَّ اسْتَقَامُوا فَلَا خَوْفٌ عَلَيْهِمْ وَلَا هُمْ يَحْزَنُونَ ١٣ اُولٰٓئِكَ
اَصْحَابُ الْجَنَّةِ خَالِدِينَ فِيهَا جَزَٓاءً بِمَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ١٤



**6**- Dema mirov (di mehşerê de) li hev bêne civandin, ew pût dê ji wan (abidên xwe) re bibin dijmin û dê ji perestina wan xwe bêrî bikin.

**7**- Dema ayetên me yên ronker ji wan re dihatin xwendin; ew ên ku kafir bûne piştî ku Quran ji wan re hat, gotin: "Ev sêhreke eşkere ye."

**8**- Yan jî ew (muşrik) dibêjin: Muhemmed, Qur'an ji cem xwe lêaniye? Bibêje (ferze-muhal) eger min ew lêanîbe, hûn dê nikaribin tiştekî ji (ezabê) Xwedê ji ser min bidin alî. Xweda, bêhtir bi ya ku hûn xwe tê de berdidin dizane. Di navbera min û we de bi şahidî Xwedê Teala bes e. Ew, gunehveşêr û dilovîn e.

**9**- Bibêje: Ez ne pêşiyê pêxemberan im. Ez nizanim dê çi ji min û çi ji we bê kirin jî. Ez tenê didim pey wehya ku ji min re hatiye û ez bes hişyarkerekî eşkere me.

**10**- Bibêje: De ka ji min re bibêjin; eger diyar bû ku ev Qur'an ji cem Xwedê ye û we jî ew înkar kiriye û ji Benî Îsraîliyan jî zanayekî ku Tewrata mîna wê dîtibe, vêca bi vê Qur'anê bawerîyê bînê û hûn jî (li hemberî baweriya pê) xwe mezin bidêrin, (ka ji we zalimtir kî heye)? Bêguman Xwedê qewmê zalim nayêne ser riya rast.

**11**- Ew ên ku kafir in, di bara yên ku bawerî anîn de, gotin: Eger ev (dînê Îslamê) çêtiriyek bûya, wan (xîzan ê hejaran) berî me bawerî pê nedianîn û dê neketana pêşiya me. Lê belê ji ber ku ew bi vê (Qur'anê) naxwazin bêne ser rêya rast, dê bibêjin: "Ev, dereweke kevnare ye."

**12**- Beriya Qur'anê jî, kitêba Mûsa (Tewrat) rêber û rehmet bû. Ev Qur'an jî, ji bo (kitêbên beriya xwe) rastdêrek e, bi zimanekî erebî ye, (daketiye) da ku yên (bi şirkê li xwe) zulim kirin (ji ezabê dojehê) hişyar bike û ew ji bo (bawermendên) qencîkar mizgînî ye.

**13**- Bêguman ew ên ku gotin: "Xwedayê me Ellah Teala ye." Piştre xwe (li ser rêya îslamê) rast û durust kirin, vêca ji bo wan (roja qiyametê) tu tirs tune ye û ew ê xemgîn jî nebin.

**14**- Ha ew xelkê bihiştê ne, ew dê her û her lê bimînin, ev xelata kirinên wan e.

وَوَصَّيْنَا الْاِنْسَانَ بِوَالِدَيْهِ اِحْسَانًاۜ حَمَلَتْهُ اُمُّهُ كُرْهًا وَوَضَعَتْهُ
كُرْهًاۜ وَحَمْلُهُ وَفِصَالُهُ ثَلٰثُونَ شَهْرًاۜ حَتّٰٓى اِذَا بَلَغَ اَشُدَّهُ وَبَلَغَ
اَرْبَع۪ينَ سَنَةًۙ قَالَ رَبِّ اَوْزِعْن۪ٓي اَنْ اَشْكُرَ نِعْمَتَكَ الَّت۪ٓي اَنْعَمْتَ
عَلَيَّ وَعَلٰى وَالِدَيَّ وَاَنْ اَعْمَلَ صَالِحًا تَرْضٰيهُ وَاَصْلِحْ ل۪ي ف۪ي
ذُرِّيَّت۪يۚ اِنّ۪ي تُبْتُ اِلَيْكَ وَاِنّ۪ي مِنَ الْمُسْلِم۪ينَ ﴿١٥﴾ اُو۬لٰٓئِكَ الَّذ۪ينَ نَتَقَبَّلُ
عَنْهُمْ اَحْسَنَ مَا عَمِلُوا وَنَتَجَاوَزُ عَنْ سَيِّـَٔاتِهِمْ ف۪ٓي اَصْحَابِ الْجَنَّةِۜ
وَعْدَ الصِّدْقِ الَّذ۪ي كَانُوا يُوعَدُونَ ﴿١٦﴾ وَالَّذ۪ي قَالَ لِوَالِدَيْهِ اُفٍّ
لَكُمَٓا اَتَعِدَانِن۪ٓي اَنْ اُخْرَجَ وَقَدْ خَلَتِ الْقُرُونُ مِنْ قَبْل۪يۚ وَهُمَا
يَسْتَغ۪يثَانِ اللّٰهَ وَيْلَكَ اٰمِنْۗ اِنَّ وَعْدَ اللّٰهِ حَقٌّۚ فَيَقُولُ مَا هٰذَٓا اِلَّٓا
اَسَاط۪يرُ الْاَوَّل۪ينَ ﴿١٧﴾ اُو۬لٰٓئِكَ الَّذ۪ينَ حَقَّ عَلَيْهِمُ الْقَوْلُ ف۪ٓي اُمَمٍ قَدْ
خَلَتْ مِنْ قَبْلِهِمْ مِنَ الْجِنِّ وَالْاِنْسِۜ اِنَّهُمْ كَانُوا خَاسِر۪ينَ ﴿١٨﴾ وَلِكُلٍّ
دَرَجَاتٌ مِمَّا عَمِلُواۚ وَلِيُوَفِّيَهُمْ اَعْمَالَهُمْ وَهُمْ لَا يُظْلَمُونَ ﴿١٩﴾
وَيَوْمَ يُعْرَضُ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا عَلَى النَّارِۜ اَذْهَبْتُمْ طَيِّبَاتِكُمْ ف۪ي
حَيَاتِكُمُ الدُّنْيَا وَاسْتَمْتَعْتُمْ بِهَاۚ فَالْيَوْمَ تُجْزَوْنَ عَذَابَ الْهُونِ
بِمَا كُنْتُمْ تَسْتَكْبِرُونَ فِي الْاَرْضِ بِغَيْرِ الْحَقِّ وَبِمَا كُنْتُمْ تَفْسُقُونَ ﴿٢٠﴾

**15**- Me, li însan qewêtî kir ku qenciyê li dê û bavê xwe bike. Dayîka wî bi zehmetî ew hilgirtiye û bi zehmetî ew welidandiye. Hilgirtina wî û jişîrvekirina wî sih mehî dewam dike. Paşê însan, çi dema ku bigihîje xortiya xwe û çil saliya xwe, dibêje: Xwedayê min! Îlhamê bide min, min muwefeq bike, da ku ez şukrê qenciya te bikim, ew qenciya ku te li min û li dê û bavê min kirî û da ku ez karekî qenc bikim ku ta razî bike û zurriyeta min jî ji bo min baş bike. Min bi bal te ve tobe kir û ez ji mislimanan im.

**16**- Ha ew in, ên ku em ê spehîtirê ya ku kirine ji wan qebûl bikin, em ê li gunehên wan biburin û ew di nava xelkê bihiştê de ne. Ev e, peymana rast a ku ji wan re hatiye dayîn.

**17**- Ew ê ku ji dê û bavê xwe re dibêje: Of ji we re be! Ma hûn sozê didin min ku ez ê (ji gorê) bême der. Hal ev e ku beriya min pir umet derbas bûne, çûne (û tu kes ji wan ji gorê dernehatine). Dê û bavê wî hawara xwe digihandin Xwedê Teala (da ku wî vegerîne rêya rast) û jê re digotin: Xwelî li te be! Îmanê bîne, bêguman soza Xwedê heq e, rast e. Vêca ew jî dibêje: Ev, (saxbûna piştî mirinê) ji çîrok û çîvanokên pêşiyan pê ve ne tiştekî dî ye.

**18**- Ev (xwediyê van gotinan), ew kes in ku wekî umetên beriya xwe; ji cin û mirovan ezab li ser wan pêwist bûye. Bêguman ew in her yên di ziyanê de.

**19**- Ji bo her kesî li hemberî kar û kiryarên wan kirî mertebeyên wan hene. Xwedê Teala dê bedêliya kirinên wan bide wan û qet neheqî dê li wan neyê kirin.

**20**- Wê roja ku yên kafir li ser êgir bêne rapêşkirin, (ji wan re dê bê gotin:) We, di jiyana xwe ya cîhanê de hemû lezzet û xweşiyên xwe birin, we bi wan kêf kir, vêca îro (!) ji ber ku we li erdê bêheqî xwe mezin didêra û ji ber ku hûn ji rê derketine, hûn ê bi ezabekî riswaker bêne cezakirin!

Jixwe eşkere ye ku ayet; nimetên xweş û pak qedexe nake. Belkî dide zanîn ku wan îman neaniye ji ber vê yekê ni'metên axîretê heq nekirine. Lewra ew bi dilbijîna cîhanê û zewq û sefaya wê lebikîbûn û haya wan ji îmanê nemabû, wan ciwaniya xwe di nava kufrê û gunehan de buhurandibû û wan dinyaya fanî di ser axireta mayende re girtibû. Êdî piştî vê ji wan re tu ni'met nemaye û ji ni'metên axiretê bêpar mane.

وَاذْكُرْ اَخَا عَادٍ اِذْ اَنْذَرَ قَوْمَهُ بِالْاَحْقَافِ وَقَدْ خَلَتِ النُّذُرُ
مِنْ بَيْنِ يَدَيْهِ وَمِنْ خَلْفِه۪ٓ اَلَّا تَعْبُدُٓوا اِلَّا اللّٰهَ اِنّ۪ٓي اَخَافُ عَلَيْكُمْ
عَذَابَ يَوْمٍ عَظ۪يمٍ ﴿٢١﴾ قَالُٓوا اَجِئْتَنَا لِتَأْفِكَنَا عَنْ اٰلِهَتِنَاۚ فَأْتِنَا
بِمَا تَعِدُنَٓا اِنْ كُنْتَ مِنَ الصَّادِق۪ينَ ﴿٢٢﴾ قَالَ اِنَّمَا الْعِلْمُ عِنْدَ
اللّٰهِ وَاُبَلِّغُكُمْ مَٓا اُرْسِلْتُ بِه۪ وَلٰكِنّ۪ٓي اَرٰيكُمْ قَوْمًا تَجْهَلُونَ ﴿٢٣﴾
فَلَمَّا رَاَوْهُ عَارِضًا مُسْتَقْبِلَ اَوْدِيَتِهِمْ قَالُوا هٰذَا عَارِضٌ مُمْطِرُنَا
بَلْ هُوَ مَا اسْتَعْجَلْتُمْ بِه۪ ر۪يحٌ ف۪يهَا عَذَابٌ اَل۪يمٌ ﴿٢٤﴾ تُدَمِّرُ
كُلَّ شَيْءٍ بِاَمْرِ رَبِّهَا فَاَصْبَحُوا لَا يُرٰٓى اِلَّا مَسَاكِنُهُمْ
كَذٰلِكَ نَجْزِي الْقَوْمَ الْمُجْرِم۪ينَ ﴿٢٥﴾ وَلَقَدْ مَكَّنَّاهُمْ ف۪يمَٓا اِنْ
مَكَّنَّاكُمْ ف۪يهِ وَجَعَلْنَا لَهُمْ سَمْعًا وَاَبْصَارًا وَاَفْـِٔدَةً فَمَٓا اَغْنٰى
عَنْهُمْ سَمْعُهُمْ وَلَٓا اَبْصَارُهُمْ وَلَٓا اَفْـِٔدَتُهُمْ مِنْ شَيْءٍ اِذْ كَانُوا
يَجْحَدُونَ بِاٰيَاتِ اللّٰهِ وَحَاقَ بِهِمْ مَا كَانُوا بِه۪ يَسْتَهْزِؤُ۫نَ
﴿٢٦﴾ وَلَقَدْ اَهْلَكْنَا مَا حَوْلَكُمْ مِنَ الْقُرٰى وَصَرَّفْنَا الْاٰيَاتِ لَعَلَّهُمْ
يَرْجِعُونَ ﴿٢٧﴾ فَلَوْلَا نَصَرَهُمُ الَّذ۪ينَ اتَّخَذُوا مِنْ دُونِ اللّٰهِ قُرْبَانًا
اٰلِهَةً بَلْ ضَلُّوا عَنْهُمْ وَذٰلِكَ اِفْكُهُمْ وَمَا كَانُوا يَفْتَرُونَ ﴿٢٨﴾

وَاِذْ

21- Wê dema birayê Ad (Hûd pêxember) qewmê xwe li erda ahqafê (ji ezabê Xwedê) hişyar kir -beriya Hûd û piştî wî jî pir pêxember (ji bo gelên xwe) hatine (şandin) û çûne- ku (Hûd ji gelê xwe re got:) Ji Xwedê pê ve îbadetê (tu kesê din) nekin. Ez li ser we ji ezabê rojeke mezin ditirsim.

22- Gelê Hûd got: (Ya Hûd!) Ma tu ji me re hatî ji bo ku me ji îbadetkirina pûtên me vegerênî? De heydê, eger tu ji rastbêjan î de ezabê ku tu pê gefan li me dikî, ji bo me bîne (bila em ezabê te bibînin!).

23- Hûd, ji wan re got: Zanîn (a bi hatina ezabê) bes li cem Xwedê Teala ye. Ez ya ku pê hatime şandin ji we re radigihînim. Lê belê ez we milletekî ku xwe li nezanînê datîne, dibînim.

24- Çi dema wan ew (ezab) di dirûvê ewrekî de dît ku berê xwe dabû ser newalên wan, gotin: Ev ewrek e dê baranê li ser me bibarîne. (Hûd, ji wan re got:) Nexêr! Ew, ew ezabê ku we lez li hatina wî dikir. Ew bayekî wisa ye ku di nava wî de ezabekî dijwar heye!

25- Ew (ba), bi fermana Xwedayê xwe her tiştî tarûmar dike, hildiweşîne. (ezabê Xweda bi ser wan de hat) edî ji cih û warên wan pê ve tiştek nema tê dîtin (lewra ew, digel mal û sewalên xwe tev çûne helakê). Ha bi vî awayî em qewmê gunehkar ceza dikin.

26- Sond be, hêz û derfetên ku me nedayî we, me dabû wan. Me, guh, çav û dil jî dabûne wan lêbelê; guhên wan, çavên wan û dilên wan tu feyde nedane wan. Lewra wan ayetên Xwedê Teala înkar dikirin. Ezabê ku wan pê tinaz dikir bi ser wan de hat û ew xistin nav xwe.

27- Sond be, Me xelkên welatên hawîrdora we jî birin helakê. Me delîl û belge pir caran anîn da ku ew vegerin ser riya rast.

28- De bila ew pûtên ku di şûna Xwedê de ji bo xwe îlah girtibûn arîkariya wan kiribûna, ew ên da ku wan nêzîkî Xwedê bikin hatibûn perestin? Nexêr, ew ji ber wan winda bûn. Ev (ya ku pût ji xwe re kirine îlah û dibêjin; ew dê me nêzî Xwedê bikin) derew û bêbextiya wan e.

**29**- Wê dema Me berê çend kesên cinî dabûn te da ku li Qur'anê guhdarî bikin. Vêca dema ji bo ku li Qur'anê guhdarî bikin amade bûn; (ji hev re) gotin: Huş bibin, li Quranê guhdarî bikin! Çi dema (xwendina) Qur'anê temam bû; li gelê xwe vegeriyan û ew pê agahdar kirin.

Tefsîrzanan gotiye, cinan bi dizîka li gotinên melayîketan guhdarî dikir. Çi dema ku asîman bi bizotên şewatok û qulker hat parastin, Îblîs got: Ev a ku li asîmên pêk hatî bi sedem rûdaneke ku li erdê rû daye. Vêca şandeyê xwe hinart ji bo ku wê xeberê fêr bibin. Karwanek ji Nisêbînê -ku serdarê cinan bûn - çû Tîhameyê. Dema gihan cihê ku navê wî "Betnu-Nexle" bû, seh kirin ku va ye Pêxember (s) nimêj dike û Qur'anê dixwîne, vêca wan jî lê guhdarî kir û ji hev re gotin: Huş bibin! Piştre, çi gava Pêxember (s) xwendina xwe temam kir, wan cinan îman pê anî. Piştre li gelê xwe vegeriyan; ew ji ezabê Xwedê Teala hişyar kirin û ew gazî îmanê kirin. Piştî vê, bir bi bir hatin bal Pêxemberî (s) û ev rûdan bû sersebebê daketina ayeta ku li jorê buhurî.

**30**- (Wan cinan ji gelê xwe re) Gotin: Gelî milletê me! Bêguman me li kitêbeke wisa guhdarî kir ku ew piştî Mûsayî hatiye hinartin, ew kitêbên beriya xwe rast didêre, mirovan gazî heqiyê dike û bi bal rêyeke rast ve rasterê dike.

**31**- Ey qewmê me! Bersiva dozdarê (dînê) Xwedê Teala bidin, baweriyê pê bînin, Xwedê jî dê li gunehên we bibûre û ji ezabekî dijwar we biparêze.

**32**- Kesê ku bersiva dozvanê (dînê) Xwedê Teala nede, li sererdê ew ê Xwedê Teala naçar nehêle û zora wî nebe. Ew ê ji Xwedê Teala pê ve ji bo xwe tu xwedî û piştevanekî nebîne. Ha ev di nav rêşaşiyeke eşkere de ne.

**33**- Ma ew nabînin, ew Xwedayê ku erd û asîman afirandin û di ber afirandina wan de newestiyaye ku Ew dikare

٥٠٧ الْجُزْءُ السَّادِسُ وَالْعِشْرُونَ

وَاِذْ صَرَفْنَٓا اِلَيْكَ نَفَرًا مِنَ الْجِنِّ يَسْتَمِعُونَ الْقُرْاٰنَۚ فَلَمَّا حَضَرُوهُ
قَالُٓوا اَنْصِتُواۚ فَلَمَّا قُضِيَ وَلَّوْا اِلٰى قَوْمِهِمْ مُنْذِرِينَ ﴿٢٩﴾ قَالُوا يَا
قَوْمَنَٓا اِنَّا سَمِعْنَا كِتَابًا اُنْزِلَ مِنْ بَعْدِ مُوسٰى مُصَدِّقًا لِمَا بَيْنَ يَدَيْهِ
يَهْدٖٓي اِلَى الْحَقِّ وَاِلٰى طَرٖيقٍ مُسْتَقٖيمٍ ﴿٣٠﴾ يَا قَوْمَنَٓا اَجٖيبُوا دَاعِيَ
اللّٰهِ وَاٰمِنُوا بِهٖ يَغْفِرْ لَكُمْ مِنْ ذُنُوبِكُمْ وَيُجِرْكُمْ مِنْ عَذَابٍ اَلٖيمٍ
﴿٣١﴾ وَمَنْ لَا يُجِبْ دَاعِيَ اللّٰهِ فَلَيْسَ بِمُعْجِزٍ فِي الْاَرْضِ وَلَيْسَ لَهُ
مِنْ دُونِهٖٓ اَوْلِيَٓاءُۜ اُولٰٓئِكَ فٖي ضَلَالٍ مُبٖينٍ ﴿٣٢﴾ اَوَلَمْ يَرَوْا اَنَّ اللّٰهَ الَّذٖي
خَلَقَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ وَلَمْ يَعْيَ بِخَلْقِهِنَّ بِقَادِرٍ عَلٰٓى اَنْ
يُحْيِيَ الْمَوْتٰىۜ بَلٰٓى اِنَّهُ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَدٖيرٌ ﴿٣٣﴾ وَيَوْمَ يُعْرَضُ الَّذٖينَ
كَفَرُوا عَلَى النَّارِۜ اَلَيْسَ هٰذَا بِالْحَقِّۜ قَالُوا بَلٰى وَرَبِّنَاۜ قَالَ
فَذُوقُوا الْعَذَابَ بِمَا كُنْتُمْ تَكْفُرُونَ ﴿٣٤﴾ فَاصْبِرْ كَمَا صَبَرَ اُولُوا الْعَزْمِ
مِنَ الرُّسُلِ وَلَا تَسْتَعْجِلْ لَهُمْۜ كَاَنَّهُمْ يَوْمَ يَرَوْنَ مَا يُوعَدُونَۙ
لَمْ يَلْبَثُٓوا اِلَّا سَاعَةً مِنْ نَهَارٍۜ بَلَاغٌۚ فَهَلْ يُهْلَكُ اِلَّا الْقَوْمُ الْفَاسِقُونَ ﴿٣٥﴾

سُورَةُ مُحَمَّدٍ مَدَنِيَّةٌ
وَهِيَ ثَمَانٍ وَثَلٰثُونَ اٰيَةً

miriyan jî sax bike? Belê, rast e. Lewra Xwedê Teala li ser her tiştî Kara ye.

**34**- Wê roja ku yên kafir bûne li ser êgir têne rapêşkirin (ku ji wan re tê gotin:) Ma ev (ezab), nerast û heq e? Ew dê bibêjin: Belê, em bi Rebbê xwe sond dixwin ku rast e. Ji wan re tê gotin: Naxwe ji ber kafirbûna xwe de ezabê tehm bikin!

**35**- Naxwe tu jî wekî wan pêxemberên "ulul ezm" ew ên ku xwe ragirtine, sebrê bikêşe û lezê ji bo (hatina ezabê ) wan meke. Roja ku ew, wî ezabê ku peymana wî ji wan re hatiye dayîn, bibînin (wê çaxê) ji wan weye ku ew tenê bi qandî saeteke rojê (li dinyayê) mane. Eva hatî gotin (ji bo we) dazanînek e. Erê ma ji civata jirêderketî pê ve kî ji holê tê rakirin?

سُورَةُ مُحَمَّدٍ ٥٠٨

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ

اَلَّذ۪ينَ كَفَرُوا وَصَدُّوا عَنْ سَب۪يلِ اللّٰهِ اَضَلَّ اَعْمَالَهُمْ ﴿١﴾ وَالَّذ۪ينَ
اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ وَاٰمَنُوا بِمَا نُزِّلَ عَلٰى مُحَمَّدٍ وَهُوَ الْحَقُّ
مِنْ رَبِّهِمْ كَفَّرَ عَنْهُمْ سَيِّـَٔاتِهِمْ وَاَصْلَحَ بَالَهُمْ ﴿٢﴾ ذٰلِكَ بِاَنَّ الَّذ۪ينَ
كَفَرُوا اتَّبَعُوا الْبَاطِلَ وَاَنَّ الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا اتَّبَعُوا الْحَقَّ مِنْ رَبِّهِمْ كَذٰلِكَ
يَضْرِبُ اللّٰهُ لِلنَّاسِ اَمْثَالَهُمْ ﴿٣﴾ فَاِذَا لَق۪يتُمُ الَّذ۪ينَ كَفَرُوا فَضَرْبَ الرِّقَابِ
حَتّٰٓى اِذَٓا اَثْخَنْتُمُوهُمْ فَشُدُّوا الْوَثَاقَ فَاِمَّا مَنًّا بَعْدُ وَاِمَّا فِدَٓاءً حَتّٰى
تَضَعَ الْحَرْبُ اَوْزَارَهَا ذٰلِكَ وَلَوْ يَشَٓاءُ اللّٰهُ لَانْتَصَرَ مِنْهُمْ وَلٰكِنْ
لِيَبْلُوَا بَعْضَكُمْ بِبَعْضٍ وَالَّذ۪ينَ قُتِلُوا ف۪ي سَب۪يلِ اللّٰهِ فَلَنْ يُضِلَّ اَعْمَالَهُمْ
﴿٤﴾ سَيَهْد۪يهِمْ وَيُصْلِحُ بَالَهُمْ ﴿٥﴾ وَيُدْخِلُهُمُ الْجَنَّةَ عَرَّفَهَا لَهُمْ
﴿٦﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُٓوا اِنْ تَنْصُرُوا اللّٰهَ يَنْصُرْكُمْ وَيُثَبِّتْ اَقْدَامَكُمْ
﴿٧﴾ وَالَّذ۪ينَ كَفَرُوا فَتَعْسًا لَهُمْ وَاَضَلَّ اَعْمَالَهُمْ ﴿٨﴾ ذٰلِكَ بِاَنَّهُمْ كَرِهُوا
مَٓا اَنْزَلَ اللّٰهُ فَاَحْبَطَ اَعْمَالَهُمْ ﴿٩﴾ اَفَلَمْ يَس۪يرُوا فِي الْاَرْضِ فَيَنْظُرُوا
كَيْفَ كَانَ عَاقِبَةُ الَّذ۪ينَ مِنْ قَبْلِهِمْ دَمَّرَ اللّٰهُ عَلَيْهِمْ وَلِلْكَافِر۪ينَ اَمْثَالُهَا
﴿١٠﴾ ذٰلِكَ بِاَنَّ اللّٰهَ مَوْلَى الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا وَاَنَّ الْكَافِر۪ينَ لَا مَوْلٰى لَهُمْ ﴿١١﴾

اِنَّ

## SÛREYÊ MUHEMMED

Sûreyê Muhemmed 38 (sih û heşt) ayet e û li Medînê daketiye. Navê sûre ji ayeta 2ê hatiye ku tê de navê Pêxemberê Îslamê Muhemmed (s) derbas bûye. Navekî din ê vî sûreyî jî Sûreyê Qîtal e ku ew jî bi maneya şer e.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

1- Ew ên ku kafir bûne û wan rêka Xwedê li ber xelkê girtiye, Xwedê Teala kirinên wan pûç kirine.

2- Ew ên ku wan bawerî anî û karên qenc kirine û wan bi Qurana ku ji Xwedayê wan ji Muhemmed (Pêxember) re hatiye hinartin -ku bêguman ew heq e- ji dil bawer kiriye, Xwedê li gunehên wan dibore û rewşa wan sererast dike.

3- Ev yek jî, ji ber vê ye ku ew ên wan bawerî neaniye daye pey batilî û ew ên ku wan bawerî aniye daye pey heqiya ku ji cem Xwedayê wan hatiye. Bi vî awayî Ellah Teala ji mirovan re encama kirinên wan bi mînakan aşkera dike (da ku li xwe bizivirin).

4- (Gelî mumînan) Gava (di şer de) hûn rastî kafiran bên li stûyên wan bixin (û wan bikujin). Paşê gava we ew pir kuştin (û we berxwedana wan şikand), vêca wan esîr bigirin û qeydên wan bişidînin. Paşê (çi gava ku ceng bi dawî bû û şervan çekên xwe danîn), êdî yan li ser wan bikin minnet bêgerew wan berdin, an jî bi gerew (bi bedêl) êsîran serbest berdin, (ev hukim dewam dike) da ku şer giraniya xwe dayîne. Ev hukmê Xwedê ye, eger Xwedê bixwesta dê (bêyî we jî) tol ji wan vekira û ew helak bibûna. Lê belê da ku hinekan ji we bi hinekan biceribîne, vê dike. Ew ên ku di riya Xwedê de hatine kuştin, Xwedê dê kirinên wan winda neke.

5- Xwedê Teala dê wan li ser riya rast rasterê bike û dê rewşa wan sererast bike.

6- Xwedê Teala dê wan bixe wê bihişta ku (li dinyayê) bi wan dabû naskirin.

7- Gelî yên ku we bawerî aniye! Eger hûn arîkariya (dînê) Xwedê Teala bikin, Xwedê jî dê arîkariya we bike û dê we li hember dijmin bide ragirtin, lingên we mikûm bigirin.

8- Herçî ew ên ku îman neaniye, riswatî û şermezarî ji wan re be. Xwedê Teala kirinên wan pûç kirine.

9- Ev (şermezarî û riswatî) jî ji ber ku wan ji Qurana ku Xwedê Teala (ew) nazil kiriye hez nekiriye. Xwedê Teala jî emelên wan pûç kirine.

10- Ma ew li ser erdê negeriyane ku bibînin ka encama wan ên ku beriya wan çûne çawa bûye? Ellah Teala ew tar û mar kirin. Ji van kafiran re jî encameke wekî wê (encama wan qewmên ku bihurîne) heye.

11- Ev (serkeftina bawermendan û jinavêbirina kafiran) jî, ji ber ku Ellah Teala piştgîrê bawermendan e. Bi rastî ji bo yên kafir, tu piştgîr û arîkar nîn in.

إِنَّ اللّٰهَ يُدْخِلُ الَّذِينَ اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ جَنَّاتٍ تَجْرِي مِنْ
تَحْتِهَا الْاَنْهَارُۜ وَالَّذِينَ كَفَرُوا يَتَمَتَّعُونَ وَيَاْكُلُونَ كَمَا تَاْكُلُ الْاَنْعَامُ
وَالنَّارُ مَثْوًى لَهُمْ ﴿١٢﴾ وَكَاَيِّنْ مِنْ قَرْيَةٍ هِيَ اَشَدُّ قُوَّةً مِنْ قَرْيَتِكَ
الَّت۪ٓي اَخْرَجَتْكَۚ اَهْلَكْنَاهُمْ فَلَا نَاصِرَ لَهُمْ ﴿١٣﴾ اَفَمَنْ كَانَ عَلٰى بَيِّنَةٍ
مِنْ رَبِّه۪ كَمَنْ زُيِّنَ لَهُ سُٓوءُ عَمَلِه۪ وَاتَّبَعُٓوا اَهْوَٓاءَهُمْ ﴿١٤﴾ مَثَلُ الْجَنَّةِ
الَّت۪ي وُعِدَ الْمُتَّقُونَۜ ف۪يهَٓا اَنْهَارٌ مِنْ مَٓاءٍ غَيْرِ اٰسِنٍۚ وَاَنْهَارٌ مِنْ لَبَنٍ لَمْ
يَتَغَيَّرْ طَعْمُهُۚ وَاَنْهَارٌ مِنْ خَمْرٍ لَذَّةٍ لِلشَّارِب۪ينَۚ وَاَنْهَارٌ مِنْ عَسَلٍ
مُصَفًّىۜ وَلَهُمْ ف۪يهَا مِنْ كُلِّ الثَّمَرَاتِ وَمَغْفِرَةٌ مِنْ رَبِّهِمْۜ كَمَنْ هُوَ
خَالِدٌ فِي النَّارِ وَسُقُوا مَٓاءً حَم۪يمًا فَقَطَّعَ اَمْعَٓاءَهُمْ ﴿١٥﴾ وَمِنْهُمْ مَنْ
يَسْتَمِعُ اِلَيْكَۚ حَتّٰٓى اِذَا خَرَجُوا مِنْ عِنْدِكَ قَالُوا لِلَّذ۪ينَ اُوتُوا الْعِلْمَ
مَاذَا قَالَ اٰنِفًا اُو۬لٰٓئِكَ الَّذ۪ينَ طَبَعَ اللّٰهُ عَلٰى قُلُوبِهِمْ وَاتَّبَعُٓوا اَهْوَٓاءَهُمْ
﴿١٦﴾ وَالَّذ۪ينَ اهْتَدَوْا زَادَهُمْ هُدًى وَاٰتٰيهُمْ تَقْوٰيهُمْ ﴿١٧﴾ فَهَلْ يَنْظُرُونَ
اِلَّا السَّاعَةَ اَنْ تَاْتِيَهُمْ بَغْتَةًۚ فَقَدْ جَٓاءَ اَشْرَاطُهَاۚ فَاَنّٰى لَهُمْ اِذَا
جَٓاءَتْهُمْ ذِكْرٰيهُمْ ﴿١٨﴾ فَاعْلَمْ اَنَّهُ لَٓا اِلٰهَ اِلَّا اللّٰهُ وَاسْتَغْفِرْ لِذَنْبِكَ
وَلِلْمُؤْمِن۪ينَ وَالْمُؤْمِنَاتِۜ وَاللّٰهُ يَعْلَمُ مُتَقَلَّبَكُمْ وَمَثْوٰيكُمْ ﴿١٩﴾

**12**- Bêguman Xwedê Teala ew ên ku wan bawerî anî û karên qenc kirin dê bixe bihiştên ku di binê wan de çem diherikin. Ew ên ku wan bawerî neanî (bi jiyara dinyayê) xweş dibin, mîna heywanan dixwin û vedixin. Cihê wan (li axiretê) her agir e.

**13**- (Ya Muhemmed!) Me gelek xelkên welatan ji holê rakirine ku ew ji xelkê welatê te, ew ê ku tu jê deraniye, xurttir û bihêztir bûn. Lê belê ji bo wan tu arîkar jî nebûn (ku wan ji helakê rizgar bikin).

**14**- Ma ew kesê ku ji Xwedayê xwe li ser delîleke aşkera ye, dibe wekî kesê ku karê wî yê nebaş jê re hatiye xemilandin û daye pey dilxwaziyên xwe (yên xerab)?

**15**- Salix û rewşa wê bihişta ku peymana wê ji mutteqiyan re hatiye dayîn wiha ye: Di nav de çemên ji avê hene ku xerab nabe, tê de çemên ji şîr hene ku tehma wî nayê guhartin, tê de çemên ji şeraban hene ku ji yên vedixwin re lezîz e, tê de çemên ji hingivên helandî yên safandî hene û tê de ji bo wan her texlît fêkî hene û ji cem Xwedayê wan ji bo wan lêborînek heye. Ma ev (ê ku di nava van Ni'metan de bijî) dibe wekî wî kesê ku her û her dê di agirê dojehê de bimîne û ji aveke kelijî bête avdan ku roviyên wî ker ker bike?

**16**- (Ya Muhemmed!) Ji minafiqan hin hene li te guhdarî dikin heyanî ji cem te dertên, ji yên xwedîzanîn re dibêjin; ma niha Muhemmed çi got? Ha ev ên hanê, ew kes in ku Ellah Teala mor li ser dilên wan daye û wan dane pey hewesên xwe.

**17**- Ew ên ku li ser riya rast rasterê bûne, Xwedê hîdayeta wan (bi guhdarîkirina li pêxember) zêde dike û rêka teqwadariya wan fêrî wan dike.

**18**- Ew (muşrik), bes li wê hêviyê ne ku ji nişka ve qiyamet bi ser wan de were. Vêca bi rastî nîşanên qiyametê hatine û xuya bûne. Erê dema ku qiyamet li wan rabû, ma êdî ew ê çawa tobe bikin û çawa jê şîretê wergirin?

**19**- Vêca tu bizane ku ji bilî Ellah Teala tu me'bûd nîn in. Daxwaza lêborîna gunehên xwe û gunehên jin û mêrên bawermend bike. Xwedê, bi ger û fera we û bi lêvehewîna we dizane.

وَيَقُولُ الَّذِينَ اٰمَنُوا لَوْلَا نُزِّلَتْ سُورَةٌۚ فَاِذَٓا اُنْزِلَتْ سُورَةٌ
مُحْكَمَةٌ وَذُكِرَ فِيهَا الْقِتَالُۙ رَاَيْتَ الَّذِينَ فِي قُلُوبِهِمْ
مَرَضٌ يَنْظُرُونَ اِلَيْكَ نَظَرَ الْمَغْشِيِّ عَلَيْهِ مِنَ الْمَوْتِۜ فَاَوْلٰى
لَهُمْۚ ﴿٢٠﴾ طَاعَةٌ وَقَوْلٌ مَعْرُوفٌۜ فَاِذَا عَزَمَ الْاَمْرُۜ فَلَوْ صَدَقُوا
اللّٰهَ لَكَانَ خَيْرًا لَهُمْۚ ﴿٢١﴾ فَهَلْ عَسَيْتُمْ اِنْ تَوَلَّيْتُمْ
اَنْ تُفْسِدُوا فِي الْاَرْضِ وَتُقَطِّعُٓوا اَرْحَامَكُمْ ﴿٢٢﴾ اُولٰٓئِكَ
الَّذِينَ لَعَنَهُمُ اللّٰهُ فَاَصَمَّهُمْ وَاَعْمٰٓى اَبْصَارَهُمْ ﴿٢٣﴾ اَفَلَا
يَتَدَبَّرُونَ الْقُرْاٰنَ اَمْ عَلٰى قُلُوبٍ اَقْفَالُهَا ﴿٢٤﴾ اِنَّ الَّذِينَ ارْتَدُّوا
عَلٰٓى اَدْبَارِهِمْ مِنْ بَعْدِ مَا تَبَيَّنَ لَهُمُ الْهُدَىۙ الشَّيْطَانُ سَوَّلَ
لَهُمْۜ وَاَمْلٰى لَهُمْ ﴿٢٥﴾ ذٰلِكَ بِاَنَّهُمْ قَالُوا لِلَّذِينَ كَرِهُوا
مَا نَزَّلَ اللّٰهُ سَنُطِيعُكُمْ فِي بَعْضِ الْاَمْرِۚ وَاللّٰهُ يَعْلَمُ
اِسْرَارَهُمْ ﴿٢٦﴾ فَكَيْفَ اِذَا تَوَفَّتْهُمُ الْمَلٰٓئِكَةُ يَضْرِبُونَ
وُجُوهَهُمْ وَاَدْبَارَهُمْ ﴿٢٧﴾ ذٰلِكَ بِاَنَّهُمُ اتَّبَعُوا مَٓا اَسْخَطَ
اللّٰهَ وَكَرِهُوا رِضْوَانَهُ فَاَحْبَطَ اَعْمَالَهُمْۚ ﴿٢٨﴾ اَمْ حَسِبَ
الَّذِينَ فِي قُلُوبِهِمْ مَرَضٌ اَنْ لَنْ يُخْرِجَ اللّٰهُ اَضْغَانَهُمْ ﴿٢٩﴾

وَلَوْ

**20-** Ew ên ku wan bawerî aniye, dibêjin: De bila (der barê ferzbûna cîhadê de) sûreyek bihata hinartin? Lê belê çi gava sûreyekî hukmê wî aşkera dakeve û tê de behsa şer (cîhadê) bê kirin, ew ên ku di dilên wan de nexweşî (ya nîfaqê) heye, tu dê bibînî ku wekî nêrîna kesê ku bêhişiya mirinê ew girtiye, li te dinêrin. Ji wan re ya çêtir û xêrtir ev bû (ku)...

**21-** Bi gotina pêxember kiribûya û bi gotina xêrê axiftibûna. Vêca gava fermana cîhadê misoger bû, êdî heke ew bi Ellah Teala re rast bûna, teqez ji wan re çêtir bû.

**22-** Nexwe ku hûn bêne ser kar, hûn ê li ser erdê tevdanê bikin û benên xizimtiyê jî bibirin?!

**23-** Ha ev, ew in ku Xwedê lanet li wan barandiye, vêca ew ker kirine û çavên wan kor kirine.

**24-** Erê ma ew li Quranê nafikirin, an jî ma li ser dilên wan kilît hene?

**25-** Bêguman ew ên ku piştî riya rast ji wan re diyar bûye berê xwe ji îslamê vegerandine, şeytên ji wan re (kufr û neqencî) şîrîn nîşan dan û gelek hêvî dane wan.

**26-** Ev (jidînderketina wan) jî, ji ber vê ye ku ji wan ên ku wan ji Quranê hez nedikir re digotin: Em ê di hin karan de bi gotina we bikin. Hal ev e ku Ellah Teala bi ya di dilên wan de veşartî jî dizane.

Ev ayeta pîroz nîşan dide ku "Irtîdad" heye. Irtîdad ew e ku piştî heqîqet ji mirovekî re eşkere bibe, bibe peyrewê wê, vêca bi sedem tasa-wasên şeytên ji îslamê vegere bal kufrê. Ji vê re gelek nîşan hene; yek ji nîşanê wê ev e ku ji wan mirovan ku bi eşkereyî dijminê îslamê ne û şerê mislimantiyê dikin, ji wan re bibêje: Di hin karên ku bi arezûyên min re mutabiq in, ezê bi ya we bikim. Ji bo vê yekê, Xwedê ew bi rêşaşkirinê ceza kirine ku ew jî wan digihîne bextreşiya seraqetî û ezabê her û herî.

**27-** Vêca dema firîşte ruhên wan bistînin û li rûyên wan û pişta wan bidin, dê rewşa wan çawa be?

**28-** Ev (ezab) jî, ji ber vê ye ku ew li pey karên ku Xwedê pê ne qayil e diçin û ji karên ku pê qayil e hez nakin, vêca Xweda karên wan pûç kirine.

**29-** Yan jî, ma ew ên ku di dilên wan de nîfaq heye hizir dikin ku Ellah Teala dê kîna wan dernexe holê?

وَلَوْ نَشَٓاءُ لَاَرَيْنَاكَهُمْ فَلَعَرَفْتَهُمْ بِسِيمٰيهُمْ وَلَتَعْرِفَنَّهُمْ فِى
لَحْنِ الْقَوْلِ وَاللّٰهُ يَعْلَمُ اَعْمَالَكُمْ ﴿٣٠﴾ وَلَنَبْلُوَنَّكُمْ حَتّٰى
نَعْلَمَ الْمُجَاهِدِينَ مِنْكُمْ وَالصَّابِرِينَ وَنَبْلُوَا اَخْبَارَكُمْ ﴿٣١﴾ اِنَّ
الَّذِينَ كَفَرُوا وَصَدُّوا عَنْ سَبِيلِ اللّٰهِ وَشَٓاقُّوا الرَّسُولَ مِنْ
بَعْدِ مَا تَبَيَّنَ لَهُمُ الْهُدٰى لَنْ يَضُرُّوا اللّٰهَ شَيْـًٔا وَسَيُحْبِطُ اَعْمَالَهُمْ
﴿٣٢﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذِينَ اٰمَنُٓوا اَطِيعُوا اللّٰهَ وَاَطِيعُوا الرَّسُولَ وَلَا
تُبْطِلُٓوا اَعْمَالَكُمْ ﴿٣٣﴾ اِنَّ الَّذِينَ كَفَرُوا وَصَدُّوا عَنْ سَبِيلِ
اللّٰهِ ثُمَّ مَاتُوا وَهُمْ كُفَّارٌ فَلَنْ يَغْفِرَ اللّٰهُ لَهُمْ ﴿٣٤﴾ فَلَا تَهِنُوا
وَتَدْعُٓوا اِلَى السَّلْمِ وَاَنْتُمُ الْاَعْلَوْنَ وَاللّٰهُ مَعَكُمْ وَلَنْ يَتِرَكُمْ
اَعْمَالَكُمْ ﴿٣٥﴾ اِنَّمَا الْحَيٰوةُ الدُّنْيَا لَعِبٌ وَلَهْوٌ وَاِنْ تُؤْمِنُوا
وَتَتَّقُوا يُؤْتِكُمْ اُجُورَكُمْ وَلَا يَسْـَٔلْكُمْ اَمْوَالَكُمْ ﴿٣٦﴾ اِنْ
يَسْـَٔلْكُمُوهَا فَيُحْفِكُمْ تَبْخَلُوا وَيُخْرِجْ اَضْغَانَكُمْ ﴿٣٧﴾
هَٓا اَنْتُمْ هٰٓؤُلَٓاءِ تُدْعَوْنَ لِتُنْفِقُوا فِى سَبِيلِ اللّٰهِ فَمِنْكُمْ مَنْ يَبْخَلُ
وَمَنْ يَبْخَلْ فَاِنَّمَا يَبْخَلُ عَنْ نَفْسِهِ وَاللّٰهُ الْغَنِىُّ وَاَنْتُمُ الْفُقَرَٓاءُ
وَاِنْ تَتَوَلَّوْا يَسْتَبْدِلْ قَوْمًا غَيْرَكُمْ ثُمَّ لَا يَكُونُٓوا اَمْثَالَكُمْ ﴿٣٨﴾

30- Eger me bixwesta me dê ew nîşanî te bidana û te yê ew ji rûyên wan nas bikirina. Sond be ku te yê wan ji şêwaza wan a axaftinê naskiribûya. Ellah Teala, hemû kar û barên we dizane.

Piştî daketina vê ayeta pîroz li ber cenabê peyxamberî tu munafiqên bi dizî neman. Ew tev ji rûyên wan dinasîn. Elametekî din ê munafiqan axaftina wan bû. Lewra li ber peyxamber (s) gava ku ew diaxivîn, bi îşaretekê peyvên xwe di ber mislimanan re diavêtin û ew diêşandin.

31- Sond be, em ê we biceribînin da ku em ji we cîhadker û sebirkêşan derînin holê û em ê rewşa we jî aşkera bikin (da ku yê rast û derewkar ji hev kifş bibe).

32- Bêguman ew ên ku wan bawerî neaniye û wan riya Ellah Teala li ber xelkê girtiye û piştî ku hîdayet ji wan re diyar bûye, wan dijraberiya pêxember kiriye, ew ê tu zerarekê negihînin Ellah Teala. Hal ev e ku Ellah Teala dê kirinên wan pûç bike.

33- Gelî yên ku bawerî anî! Guhdariya Ellah Teala bikin, bi gotina Pêxember bikin û kar û kiryarên xwe (bi bêîtaetiyê) pûç mekin.

34- Bêşik ew ên ku wan bawerî neaniye û riya Xwedê li ber xelkê girtiye û piştre jî li ser kufrê mirine, Ellah Teala dê hîç li wan nebore.

35- Zinhar, sist mebin ku vêca hûn daxwaza lihevhatinê bikin. Her hûn in yên serkeftî û Xwedê digel we ye. Ew ê hîç (xelata) kirinên we kêm neke.

36- Bi rastî jiyana cîhanê bes kêf û mijûlahî ye (vêca bi wê nexapin). Eger hûn bawerî bînin û hûn hay ji helal û heramên Xwedê hebin, Xwedê dê padaşa we tam bide we û ji we (xerckirina) tu malî jî naxwaze.

37- Heke Xwedê Teala malê we ji we bixwesta, vêca li ser dayînê zor li we bikira, we dê nemerdî bikira û vê yekê dê kîna we (ya li hemberî îslamê) deraniya meydanê.

38- Hûn ev ên han, bang li we tê kirin ku hûn malên xwe di riya Xwedê Teala de xerc bikin. Ji we hinek nemerdiyê dikin. Lê belê kî nemerdiyê bike, ew nemerdiyê ji xwe re dike. Ellah Teala dewlemend e, hewceyî bi tu kesî tune ye û hûn xizan in hewcedarê wî ne. Eger hûn berê xwe ji (îtaeta) Xwedê Teala biguherînin, Xwedê dê qewmekî din bîne şûna we, paşê ew ê ne wekî we bin.



## SÛREYÊ EL-FETIH

Sûreyê Fetih 29 (bîst û neh) ayet e û li navbera Mekke û Medîneyê hatiye ku hingê Pêxember (s) ji peymana aştiyê ya Hudeybiyê vedigeriya. Sûre, navê xwe ji peyva fetihê girtiye ku di ayeta 1an de derbas bûye û bi mehneya "vekirin, vegirtin, standin, serkeftin û azadkirin"ê tê.

**Fezîleta Sûretî;** Dema ku peyxamberê Xwedê (s) ji "Sulha Hudeybiyeyê" vedigere û ev sûret jê re tê hinartin, wiha dibêje: "Îşev, sûreyek ji min re hat ku li bal min ew ji dinyayê û tiştên ku lê hene tevî şîrîntir e."

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

1- (Ya Muhemmed!) Bi rastî me deriye serkeftineke aşkera û mezin ji bo te vekir.

2- Da ku Xwedê Teala, gunehên te yên ku bihurîne û yên ku hê bên, bibexşîne û qenciya xwe (serkeftina dînê te) li ser te temam bike û li ser riyeke rast û durist te rasterê bike.

3- Hem da ku bi serkeftineke bêşikestin te bi ser bixe.

4- Ew Xwedayê ku aramiyê dixe dilên mumînan da ku îmana wan xurt û zêde bibe. Leşkerên erd û asîmanan her yên Xwedê ne. Ellah Teala her zana û xwedanhîkmet e.

5- Ev tev, da ku Xwedê zilamên mumîn û jinên mumîn bixe bihiştên ku di binê wan de çem diherikin û ew ê her û her di wan cenetan de bin û da ku Xwedê gunehên wan efû bike. Ha ev li cem Xwedê Teala serfiraziyake mezin e.

6- (Hem jî) da ku Ellah Teala mêrên munafiq û jinên munafiq, mêrên muşrik û jinên muşrik, ew ên ku der barê Xwedê de zena xerab dikin, bide ezab. Çerxa xerabî û ezab li ser wan be. Ellah Teala qehr û xezeb li wan kiriye, lanet li wan barandiye û ji bo wan dojeh amade kiriye. Ew çi cihlêvegerîneke pîs e!

7- Leşkerên erd û asîmanan her yên Xwedê Teala ne. Xweda di kar û barê xwe de her desthilat e, xwedîhikmet e.

8- (Ya Muhemmed!) Bi rastî me tu hinartî da ku li ser umeta xwe bibî şahid, ji bawermendan re bibe mizgînber û ji bo gunehkaran bibe hişyarker.

9- Da ku mirov bi Xwedê û pêxemberê wî bawerî bînin û arîkariya pêxemberê wî bikin, rêz û hurmeta wî bigirin û da ku sibeh û êvarê Xwedê Teala pak bidêrin.

اِنَّ الَّذِينَ يُبَايِعُونَكَ اِنَّمَا يُبَايِعُونَ اللّٰهَ يَدُ اللّٰهِ فَوْقَ اَيْدِيهِمْ
فَمَنْ نَكَثَ فَاِنَّمَا يَنْكُثُ عَلٰى نَفْسِهِ وَمَنْ اَوْفٰى بِمَا عَاهَدَ
عَلَيْهُ اللّٰهَ فَسَيُؤْتِيهِ اَجْرًا عَظِيمًا ﴿١٠﴾ سَيَقُولُ لَكَ الْمُخَلَّفُونَ
مِنَ الْاَعْرَابِ شَغَلَتْنَا اَمْوَالُنَا وَاَهْلُونَا فَاسْتَغْفِرْ لَنَا يَقُولُونَ
بِاَلْسِنَتِهِمْ مَا لَيْسَ فِي قُلُوبِهِمْ قُلْ فَمَنْ يَمْلِكُ لَكُمْ مِنَ اللّٰهِ
شَيْـًٔا اِنْ اَرَادَ بِكُمْ ضَرًّا اَوْ اَرَادَ بِكُمْ نَفْعًا بَلْ كَانَ اللّٰهُ
بِمَا تَعْمَلُونَ خَبِيرًا ﴿١١﴾ بَلْ ظَنَنْتُمْ اَنْ لَنْ يَنْقَلِبَ الرَّسُولُ
وَالْمُؤْمِنُونَ اِلٰى اَهْلِيهِمْ اَبَدًا وَزُيِّنَ ذٰلِكَ فِي قُلُوبِكُمْ
وَظَنَنْتُمْ ظَنَّ السَّوْءِ وَكُنْتُمْ قَوْمًا بُورًا ﴿١٢﴾ وَمَنْ لَمْ يُؤْمِنْ بِاللّٰهِ
وَرَسُولِهِ فَاِنَّا اَعْتَدْنَا لِلْكَافِرِينَ سَعِيرًا ﴿١٣﴾ وَلِلّٰهِ مُلْكُ السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضِ يَغْفِرُ لِمَنْ يَشَاءُ وَيُعَذِّبُ مَنْ يَشَاءُ وَكَانَ اللّٰهُ
غَفُورًا رَحِيمًا ﴿١٤﴾ سَيَقُولُ الْمُخَلَّفُونَ اِذَا انْطَلَقْتُمْ اِلٰى مَغَانِمَ
لِتَاْخُذُوهَا ذَرُونَا نَتَّبِعْكُمْ يُرِيدُونَ اَنْ يُبَدِّلُوا كَلَامَ اللّٰهِ
قُلْ لَنْ تَتَّبِعُونَا كَذٰلِكُمْ قَالَ اللّٰهُ مِنْ قَبْلُ فَسَيَقُولُونَ
بَلْ تَحْسُدُونَنَا بَلْ كَانُوا لَا يَفْقَهُونَ اِلَّا قَلِيلًا ﴿١٥﴾

**10**- Bêguman ew ên ku peymanê didine te, bi rastî ew peymanê didin Xwedê Teala; destê Xweda li ser destên wan e. Vêca kî peymana xwe bişkîne webalê peymanşikandina wî ji wî re ye. Kî wê peymana ku daye Xwedê bîne cih, vêca Xweda dê xelateke mezin bide wî.

Di sala şeşê hicretê de Pêxemberê Xwedê (s) digel hezar û çarsed sehabiyên xwe bi qesda Umrê berê xwe dane rêka Mekkê. Lêbelê Qureyşiyan nedixwest misliman bikevin Mekkê, vêca hin çekdarên xwe şandin pêşiya wan. Pêxember, ji girikan derbas bû û gihişt Hudeybiyê û şer jî nedixwest. Osman (r) wek qasid şand bal Qureyşiyan da ku bi wan re sulhê bike. Çi gava ku Osman dereng ma û zû venegeriya, peyxamber li binê darekê rûnişt û ji sehabiyên xwe peyman stand; eger ku Osman hatibe kuştin ew ê jî heta mirinê şer bikin. Wan jî soz dane pêxember. Paşê Osman (r) vegeriya û misliman û qureyşiyan peyman da hev ku heta deh salan şerê hev nekin. Ev ayeta ku derbas bû ji vê rewşê xeber daye û ev bey'et îşaret kiriye.

**11**- Ew bedewiyên ku xwe li paş hiştine (û beşdarî cenga Hudeybiyê nebûne), dê ji te re bibêjin: Mal û eyalên me em mijûlkirin (me nekarî digel te derkevin Hudeybiyê, vêca) ji Xwedê Teala lêborîna me bixwaze. Ew, tiştê ku bi zimanê xwe dibêjin, ne yê di dilê wan de ye. Bibêje: Eger Ellah Teala bixwaze zerarekê bide we, yan jî bixwaze feydeyekê bide we, qey li hemberî Xwedê Teala kî dikare tiştekî bike? Belkî Ellah Teala bi her çi tiştê ku hûn dikin agahdar e.

**12**- Belê, we hizir dikir ku pêxember û mumîn dê qet li malbatên xwe venegerin. Ev di dilê we de hate xemilandin û we gumana xerab kiribû û hûn bûne civateke sezawarê (musteheqê) helakê.

**13**- Kî (ji dil û can) bawerî bi Ellah Teala û pêxemberê wî neyîne, bêguman Me ji bo kafiran agirekî dijwar amade kiriye.

**14**- Xwedanî û hukimraniya erd û asîmanan xasê bi Xwedê ve ye. Ew kê bivê dibexşîne, kê jî bivê dide ezab. Ellah Teala, her gunehjêbir e, dilovîn e.

**15**- Ew ên ku (ji Hudeybiyê) li paş mane dê bibêjin: Gava hûn ji bo bidestxistina xeNi'metê derkevin (Xeyberê) bihêlin da ku em jî digel we bên. Ew dixwazin ku soza Xwedê biguherînin (a ku bi xelkê Hudeybiyê re dabû). Bibêje: Hûn ê qet bi me re neyên. Ev hê berî niha Xwedê ji we re gotiye (yanî, hukmê xwe wiha biriye ku xeNi'metên Xeyberê ji bo wan kesan e ku beşdarî sulha Hudeybiyeyê bûne û tu heqê ji bilî wan tê de nîn e). Ew dê ji we re bibêjin: Ne wisan e, belkî hûn ji çevnebarî vê dibêjin. Nexêr, ne wekî wan e, belkî ew civateke wisan e ku pir hindik fehm dikin.

قُلْ لِلْمُخَلَّفٖينَ مِنَ الْاَعْرَابِ سَتُدْعَوْنَ اِلٰى قَوْمٍ اُو۬لٖى بَأْسٍ شَدٖيدٍ
تُقَاتِلُونَهُمْ اَوْ يُسْلِمُونَۚ فَاِنْ تُطٖيعُوا يُؤْتِكُمُ اللّٰهُ اَجْرًا حَسَنًاۚ
وَاِنْ تَتَوَلَّوْا كَمَا تَوَلَّيْتُمْ مِنْ قَبْلُ يُعَذِّبْكُمْ عَذَابًا اَلٖيمًا ﴿١٦﴾
لَيْسَ عَلَى الْاَعْمٰى حَرَجٌ وَلَا عَلَى الْاَعْرَجِ حَرَجٌ وَلَا عَلَى الْمَرٖيضِ
حَرَجٌۜ وَمَنْ يُطِعِ اللّٰهَ وَرَسُولَهُ يُدْخِلْهُ جَنَّاتٍ تَجْرٖي مِنْ تَحْتِهَا
الْاَنْهَارُۚ وَمَنْ يَتَوَلَّ يُعَذِّبْهُ عَذَابًا اَلٖيمًا ﴿١٧﴾ لَقَدْ رَضِيَ اللّٰهُ عَنِ
الْمُؤْمِنٖينَ اِذْ يُبَايِعُونَكَ تَحْتَ الشَّجَرَةِ فَعَلِمَ مَا فٖي قُلُوبِهِمْ
فَاَنْزَلَ السَّكٖينَةَ عَلَيْهِمْ وَاَثَابَهُمْ فَتْحًا قَرٖيبًاۙ ﴿١٨﴾ وَمَغَانِمَ كَثٖيرَةً
يَأْخُذُونَهَاۜ وَكَانَ اللّٰهُ عَزٖيزًا حَكٖيمًا ﴿١٩﴾ وَعَدَكُمُ اللّٰهُ
مَغَانِمَ كَثٖيرَةً تَأْخُذُونَهَا فَعَجَّلَ لَكُمْ هٰذِهٖ وَكَفَّ اَيْدِيَ
النَّاسِ عَنْكُمْۚ وَلِتَكُونَ اٰيَةً لِلْمُؤْمِنٖينَ وَيَهْدِيَكُمْ صِرَاطًا
مُسْتَقٖيمًاۙ ﴿٢٠﴾ وَاُخْرٰى لَمْ تَقْدِرُوا عَلَيْهَا قَدْ اَحَاطَ اللّٰهُ بِهَاۜ
وَكَانَ اللّٰهُ عَلٰى كُلِّ شَيْءٍ قَدٖيرًا ﴿٢١﴾ وَلَوْ قَاتَلَكُمُ الَّذٖينَ
كَفَرُوا لَوَلَّوُا الْاَدْبَارَ ثُمَّ لَا يَجِدُونَ وَلِيًّا وَلَا نَصٖيرًا ﴿٢٢﴾ سُنَّةَ
اللّٰهِ الَّتٖي قَدْ خَلَتْ مِنْ قَبْلُۚ وَلَنْ تَجِدَ لِسُنَّةِ اللّٰهِ تَبْدٖيلًا ﴿٢٣﴾

وَهُوَ

**16**- Ji bedewiyên ku li paş mane re bibêje: Li hemberî miletekî ku xwedan hêzeke dijwar e gaziya şer dê li we bê kirin. Hûn ê şerê wan bikin, an jî ew ê (bêşer) misliman bibin. Vêca eger hûn (çûna şer) qebûl bikin, Ellah Teala dê perûyeke spehî bide we. Lê belê eger weke cara pêşîn hûn dîsa ji paş ve vegerin, Ellah Teala dê bi ezabekî dijwar û cansoj we ceza bike.

**17**- Li ser koran tu guneh nîn e, li ser seqetan tu guneh nîn e û li ser nexweşan jî tu guneh nîn e (ku beşdarî şer nebin). Kî bi gotina EllahTeala û pêxemberê wî bike, Xweda dê wî bixe bihiştên ku di binê wan de çem diherikin. Kî li paş bimîne Ellah Teala dê bi ezabekî dijwar û xemnak wî ceza bike.

**18**- Sond be, Xweda ji mumînan razî bûye li wê dema ku wan li binê darê peyman daye te. Vêca bi (rastî û wefadarî) ya ku di dilê wan de heye Xweda zaniye, êdî aramî û tenahî bi ser wan de şand û bi vekirina rêke serkeftineke nêzîk (bi fetha Xeyberê) ew xelat kirin.

**19**-(Xwedê soza) gelek xeNi'metên din jî dane wan ku ew ê wergirin. Xwedê Teala di kar û barê xwe de her serdest e, xwedîhikmet e.

**20**- Ellah Teala peymana gelek xeNi'metan daye we ku hûn dê wan wergirin. Bi lez ev (xeNi'metên Xeyberê) daye we û destên mirovan ji (zerara ku bidin) we girtiye û da ku ev ji mumînan re bibe nîşanek (ku Xwedê soza xwe tîne cih) û Xwedê dê li ser riya rast û durist, we rasterê bike.

**21**- Hin xeNi'metên din jî, ji bo we hene ku vêga hêza we ji wan re nîn e. Lê belê Xwedê ji bo we, ji her terefî ve dor li wan girtiye. Ellah Teala li ser her tiştî her kara ye.

**22**- Eger ew ên ku kafir bûne şerê we kiribûna, dê bişkestina û dê bi paş ve revîbûna. Piştre dê wan ji xwe re xwedî û arîkar jî nedîtina.

**23**- Ev suneta (qanûna) Ellah Teala ye ku ji berê ve wiha derbas bûye (ku Xwedê pêxemberê xwe bi ser têxe) û tu dê hîç guhartinekê di qanûnên Xwedê de nebînî.

وَهُوَ الَّذٖى كَفَّ اَيْدِيَهُمْ عَنْكُمْ وَاَيْدِيَكُمْ عَنْهُمْ بِبَطْنِ مَكَّةَ
مِنْ بَعْدِ اَنْ اَظْفَرَكُمْ عَلَيْهِمْ وَكَانَ اللّٰهُ بِمَا تَعْمَلُونَ
بَصٖيرًا ٢٤ هُمُ الَّذٖينَ كَفَرُوا وَصَدُّوكُمْ عَنِ الْمَسْجِدِ
الْحَرَامِ وَالْهَدْىَ مَعْكُوفًا اَنْ يَبْلُغَ مَحِلَّهُ وَلَوْلَا رِجَالٌ مُؤْمِنُونَ
وَنِسَٓاءٌ مُؤْمِنَاتٌ لَمْ تَعْلَمُوهُمْ اَنْ تَطَؤُهُمْ فَتُصٖيبَكُمْ مِنْهُمْ
مَعَرَّةٌ بِغَيْرِ عِلْمٍ لِيُدْخِلَ اللّٰهُ فٖى رَحْمَتِهٖ مَنْ يَشَٓاءُ لَوْ تَزَيَّلُوا
لَعَذَّبْنَا الَّذٖينَ كَفَرُوا مِنْهُمْ عَذَابًا اَلٖيمًا ٢٥ اِذْ جَعَلَ الَّذٖينَ
كَفَرُوا فٖى قُلُوبِهِمُ الْحَمِيَّةَ حَمِيَّةَ الْجَاهِلِيَّةِ فَاَنْزَلَ اللّٰهُ
سَكٖينَتَهُ عَلٰى رَسُولِهٖ وَعَلَى الْمُؤْمِنٖينَ وَاَلْزَمَهُمْ كَلِمَةَ التَّقْوٰى
وَكَانُٓوا اَحَقَّ بِهَا وَاَهْلَهَا وَكَانَ اللّٰهُ بِكُلِّ شَیْءٍ عَلٖيمًا ٢٦
لَقَدْ صَدَقَ اللّٰهُ رَسُولَهُ الرُّءْيَا بِالْحَقِّ لَتَدْخُلُنَّ الْمَسْجِدَ
الْحَرَامَ اِنْ شَٓاءَ اللّٰهُ اٰمِنٖينَ مُحَلِّقٖينَ رُؤُسَكُمْ وَمُقَصِّرٖينَ
لَا تَخَافُونَ فَعَلِمَ مَا لَمْ تَعْلَمُوا فَجَعَلَ مِنْ دُونِ ذٰلِكَ فَتْحًا
قَرٖيبًا ٢٧ هُوَ الَّذٖٓى اَرْسَلَ رَسُولَهُ بِالْهُدٰى وَدٖينِ الْحَقِّ
لِيُظْهِرَهُ عَلَى الدّٖينِ كُلِّهٖ وَكَفٰى بِاللّٰهِ شَهٖيدًا ٢٨

**24**- Ew Xweda ye, ew ê ku piştî hûn li hemberî wan bi ser xistin, li newala Mekkeyê destên wan ji ser we dan paş û destên we jî ji ser wan dan paş. Xwedê bi kar û kiryarên ku hûn dikin, bîner e.

**25**- Ew (ên ku behsa wan bihûrî), ew ên ku kafir bûne û berê we ji ziyareta mizgefta Mescîdul Heramê dagerandine û nehiştine ew qurbanên ku hatine berhevkirin bigihîjin cihê xwe (ku bêne qurbankirin). Eger ne ji hebûna hinek mêr û jinên mumîn bûya ku haya we ji wan tune ye ku we yê ew biçewisandina, vêca bêyî ku haya we jê hebûya hûn ê biketina bin webalekî giran (Me dê hûn museletî ser wan bikira). (Ev tev) da ku Xwedê yê ew bivê wî têxe ber rehma xwe. Eger ew (mumîn û kafir) ji hev cuda bûna, teqez ji wan ên ku îman neaniye Me dê ezabekî cansoj bidaya wan.

**26**- Wê dema ku wan ên îman neaniye rika cahiliyetê xist dilên xwe, vêca Xwedê jî tenahî û aramiya xwe bi ser pêxemberê xwe û mumînan de şand û kelîmeya teqwayê (Kelîma Tewhîdê) li ser wan pêwîst kir. Ew bi xwe jî her babettir û ehiltirê wê bûn. Ellah Teala, bi her tiştî her zana ye.

Resûlê Xwedê (s) di xewna xwe de dîtibû ku ew û hevalên xwe diçûn Mekkeyê û Ke'be tewaf dikirin, piştre hinekan ji wan pora xwe diqusand û hinan ji wan jî pora xwe kurt dikir. Vêca Pêxember (s) ev xewna xwe ji hevalên xwe re jî got. Ew jî pê kêfxweş û şad bûn. Çi gava ku Pêxember (s) digel hevalên xwe derket Hudeybiyê û pûtperestan nehêla ew here Mekkê û sulha Hudeybiyê hat kirin, munafiq ketin gumanê û wiha gotin: Em bi Xwedê sond dixwin ku me pora xwe kurt nekir û me Ke'be jî nedît. Kanî, ew xewn li ku ma? Hinekî şik ket dilê hin muminan jî. Vêca Xwedê, ev ayeta ku tê nazil kir û da zanîn ku ew xewn hemin heq û rast e.

**27**- Sond be ku Ellah Teala xewna pêxemberê xwe bi heqî deraniye rastê. Hûn ê bi destûra Xwedê, bi ewlehî û bêtirs herin Mescîdul Heramê. Hin ji we porê xwe tevî biqusînin û hin ji we jî kurt bikin. Ellah Teala ya ku hûn nizanin, dizane. Vêca ji bilî vê jî Xwedê fetheke nêzîk daye we (ku fetha Xeyberê ye).

**28**- Ew e, yê ku pêxemberê xwe bi hîdayet û dînê heq şandiye, da ku dînê wî bi ser hemû dînan bixe. Li ser vê yeke Xweda bi şahidî bes e.

مُحَمَّدٌ رَسُولُ اللّٰهِۜ وَالَّذ۪ينَ مَعَهُٓ اَشِدَّٓاءُ عَلَى الْكُفَّارِ رُحَمَٓاءُ بَيْنَهُمْ
تَرٰيهُمْ رُكَّعًا سُجَّدًا يَبْتَغُونَ فَضْلًا مِنَ اللّٰهِ وَرِضْوَانًاۘ س۪يمَاهُمْ ف۪ي
وُجُوهِهِمْ مِنْ اَثَرِ السُّجُودِۜ ذٰلِكَ مَثَلُهُمْ فِي التَّوْرٰيةِۚ وَمَثَلُهُمْ فِي
الْاِنْج۪يلِۚ كَزَرْعٍ اَخْرَجَ شَطْـَٔهُ فَاٰزَرَهُ فَاسْتَغْلَظَ فَاسْتَوٰى عَلٰى
سُوقِه۪ يُعْجِبُ الزُّرَّاعَ لِيَغ۪يظَ بِهِمُ الْكُفَّارَۜ وَعَدَ اللّٰهُ الَّذ۪ينَ
اٰمَنُوا وَعَمِلُوا الصَّالِحَاتِ مِنْهُمْ مَغْفِرَةً وَاَجْرًا عَظ۪يمًا ﴿٢٩﴾




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا لَا تُقَدِّمُوا بَيْنَ يَدَيِ اللّٰهِ وَرَسُولِه۪ وَاتَّقُوا اللّٰهَۜ
اِنَّ اللّٰهَ سَم۪يعٌ عَل۪يمٌ ﴿١﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا لَا تَرْفَعُٓوا اَصْوَاتَكُمْ فَوْقَ
صَوْتِ النَّبِيِّ وَلَا تَجْهَرُوا لَهُ بِالْقَوْلِ كَجَهْرِ بَعْضِكُمْ لِبَعْضٍ اَنْ تَحْبَطَ
اَعْمَالُكُمْ وَاَنْتُمْ لَا تَشْعُرُونَ ﴿٢﴾ اِنَّ الَّذ۪ينَ يَغُضُّونَ اَصْوَاتَهُمْ عِنْدَ رَسُولِ
اللّٰهِ اُو۬لٰٓئِكَ الَّذ۪ينَ امْتَحَنَ اللّٰهُ قُلُوبَهُمْ لِلتَّقْوٰىۜ لَهُمْ مَغْفِرَةٌ وَاَجْرٌ عَظ۪يمٌ
﴿٣﴾ اِنَّ الَّذ۪ينَ يُنَادُونَكَ مِنْ وَرَٓاءِ الْحُجُرَاتِ اَكْثَرُهُمْ لَا يَعْقِلُونَ ﴿٤﴾
وَلَوْ اَنَّهُمْ

**29**- Muhammed pêxemberê Xweda ye. Ew ên ku digel wî ne li hember kafiran dijwar in û di navbera xwe de bimerhemet in. Tu wan di rukû' û sicûdê de dibînî. Ew ji Ellah Teala kerem û razîbûnê dixwazin. Nîşana secdebirinê di rûyên wan de xuya dike. Ev wesfên wan ên di Tewratê de ne, herçî wesfên wan ên di Încîlê de jî wiha ne. Ew weke çandiniyekê ne ku zîxa xwe derxistiye, xurt bûye, stûr bûye û xwe li ser koka xwe girtiye ku ev, li xweşa cotkaran jî diçe. Ellah Teala bi vî awayî wan xurt û belav dike da ku kafiran hêrs bike. Ellah Teala ji bo wan ên bawerî anî û karên qenc kirine, peymana lêborîn û padaşeke mezin daye.

## SÛREYÊ EL-HUCURAT

Sûreyê Hucurat 18 (hijdeh) ayet e. Li Medînê daketiye. Sûre navê xwe ji ayeta 4'em girtiye ku tê de bêjeya El Hucurat derbas bûye û bi mehneya "gelek ode" ye. Sûreyê Hucurat, digel ku sûreyekî kurt e jî lêbelê; ji aliyê mane û naveroka xwe ve mezin û fereh e ku di nava xwe de heqîqetên perwerdeya nemir û hîmên şaristaniya bînpak vedihewîne. Vêca hin tefsîrzanan jê re gotiye: "Sûreyê Exlaqên Xweş." Sûreyî, bi girîngî behsa toreya bilind kiriye ku Xwedê misliman pê terbiye kirine û daye zanîn ku ew tore jî ev e; divê ew li hizûra Pêxemberê Xwedê (s) beriya ku pê bişêwirin û xwe bi şîretên wî yên hekîmane bigrin, ew karekî venebirrin, nêrînekê eşkere nekin û hukmê çu meseleyê nedin.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

**1**- Gelî yên ku bawerî anîne! Nekevin pêşiya Ellah Teala û qasidê wî (yani berî hûn hukmê Xwedê û pêxemberê wî bizanin tu gotinekê, yan jî kirinekê nekin). Ji pêkneanîna hukmê Xwedê xwe biparêzin. Bêguman Ellah Teala bihîzer e, zana ye.

**2**- Gelî yên ku bawerî anîne! Dengê xwe bi ser yê Pêxember nexin, çawa ku hûn bi dengê bilind gazî hev dikin wisa gazî Pêxember mekin û bêyî ku haya we jê çêbe emelên we pûç bibin.

**3**- Bêguman ew ên li cem resûlê Ellah Teala dengê xwe nizm dikin, ha ew, ew in ku Xwedê dilê wan ji bo teqwadariyê ceribandiye. Ji wan re lêborîn û padaşeke mezin heye.

**4**- (Ya Muhemmed!) Bi rastî ew ên ku ji pişta xaniyan bi dengê bilind gazî te dikin pirê wan fehm nakin.

وَلَوْ اَنَّهُمْ صَبَرُوا حَتّٰى تَخْرُجَ اِلَيْهِمْ لَكَانَ خَيْرًا لَهُمْۜ وَاللّٰهُ غَفُورٌ
رَحٖيمٌ ﴿٥﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذٖينَ اٰمَنُٓوا اِنْ جَٓاءَكُمْ فَاسِقٌ بِنَبَاٍ فَتَبَيَّنُٓوا اَنْ
تُصٖيبُوا قَوْمًا بِجَهَالَةٍ فَتُصْبِحُوا عَلٰى مَا فَعَلْتُمْ نَادِمٖينَ ﴿٦﴾
وَاعْلَمُٓوا اَنَّ فٖيكُمْ رَسُولَ اللّٰهِۜ لَوْ يُطٖيعُكُمْ فٖي كَثٖيرٍ مِنَ الْاَمْرِ
لَعَنِتُّمْ وَلٰكِنَّ اللّٰهَ حَبَّبَ اِلَيْكُمُ الْاٖيمَانَ وَزَيَّنَهُ فٖي قُلُوبِكُمْ وَكَرَّهَ
اِلَيْكُمُ الْكُفْرَ وَالْفُسُوقَ وَالْعِصْيَانَۜ اُولٰٓئِكَ هُمُ الرَّاشِدُونَۙ ﴿٧﴾
فَضْلًا مِنَ اللّٰهِ وَنِعْمَةًۜ وَاللّٰهُ عَلٖيمٌ حَكٖيمٌ ﴿٨﴾ وَاِنْ طَٓائِفَتَانِ مِنَ
الْمُؤْمِنٖينَ اقْتَتَلُوا فَاَصْلِحُوا بَيْنَهُمَاۚ فَاِنْ بَغَتْ اِحْدٰيهُمَا عَلَى
الْاُخْرٰى فَقَاتِلُوا الَّتٖي تَبْغٖي حَتّٰى تَفٖيٓءَ اِلٰٓى اَمْرِ اللّٰهِۚ فَاِنْ فَٓاءَتْ
فَاَصْلِحُوا بَيْنَهُمَا بِالْعَدْلِ وَاَقْسِطُواۜ اِنَّ اللّٰهَ يُحِبُّ الْمُقْسِطٖينَ ﴿٩﴾
اِنَّمَا الْمُؤْمِنُونَ اِخْوَةٌ فَاَصْلِحُوا بَيْنَ اَخَوَيْكُمْ وَاتَّقُوا اللّٰهَ لَعَلَّكُمْ
تُرْحَمُونَ ﴿١٠﴾ يَٓا اَيُّهَا الَّذٖينَ اٰمَنُوا لَا يَسْخَرْ قَوْمٌ مِنْ قَوْمٍ عَسٰٓى
اَنْ يَكُونُوا خَيْرًا مِنْهُمْ وَلَا نِسَٓاءٌ مِنْ نِسَٓاءٍ عَسٰٓى اَنْ يَكُنَّ خَيْرًا
مِنْهُنَّۚ وَلَا تَلْمِزُٓوا اَنْفُسَكُمْ وَلَا تَنَابَزُوا بِالْاَلْقَابِۜ بِئْسَ الِاسْمُ
الْفُسُوقُ بَعْدَ الْاٖيمَانِۚ وَمَنْ لَمْ يَتُبْ فَاُولٰٓئِكَ هُمُ الظَّالِمُونَ ﴿١١﴾

**5-** Eger wan sebir bikira heta ku tu derketayî cem wan, teqez ji wan re çêtir dibû. Ellah Teala gunehjêbir û dilovîn e.

**6-** Gelî yên ku bawerî anîne! Eger yekî fasiq (derewker) ji were xeberekê bîne, vêca rastiya wê bikolin (ka rast e yan na), ku hûn rastiya wê nekolin, bê zanîn hûn dê destdirêjî civatekê bikin û piştre hûn ê li kirina xwe poşman bibin.

**7-** Hûn bizanin ku Resûlullah di nav we de ye. Eger wî di pir kar û baran de bi gotina we bikira, hûn ê biketina tengasiyê. Lê belê Ellah Teala îman bi we daye hezkirin û ew di dilê we de xweşik kiriye. Kufr û fisq û îsyan jî ji bo we kirêt nîşan dane. Ha ev in, yên ku di riya rast de ne.

**8-** Ev (ji bo we) ji Ellah Teala lutf û Ni'metek e. Ellah Teala elîmê hekîm e.

**9-** Eger ji mumînan du kom şerê hev bikin, wan li hev bînin. Eger yek ji wan êrîşî ser a din bike, heta ku li hukmê Xwedê Teala vegere hûn şerê koma ku êrîş kiriye bikin. Eger (ji êrîşkariya xwe) vegere, êdî bi edaletî nava wan çêkin û (di her kar û barî de) bi dadî hukim bikin. Bêguman Xwedê ji dadperweran hez dike.

Ev ayet, ji bo bawermendan dîrektîfeke giring e. Bingeha aştiya civatî ya navxweyî, navneteweyî û navdewletî ye. Ew fermanê li mu'minan dike ku ew sazûmanekê û rêxistineke di ser netewe, civat û dewletan re biçespînin da ku ew problemên herêmî û neteweyî çareser bike, nehêle tu millet neheqiyê li tu milletî bike û nakokiyên navbera xelkê çareser bike. Herwiha dide zanîn ku ew sazûman dê tenha ne sivîl be û ne şîretan bike. Heke millet, kom û kesê êrîşkar ji neheqiya xwe venegere divê ew li tenişta yê mezlûm raweste, piştgiriya wî bike û şerê yê zalim bike heta ku wî vegerîne heqiyê û qebûlkirina hiqûq û edaletê. Herwiha ev ayet, dide zanîn ku mafê tu aliyê şer nîn e ku tekfîra hemberê xwe bike û îdîa bike ku ew ji bo yekîtiya erda dewleta xwe û berjewendiyên xelkê xwe şerê xelkekî din dike, yan jî axa wî dagir dike.

**10-** Bi rastî mumîn bes ji hev re bira ne. Nexwe navbera birayên xwe çêkin û xwe ji pêkneanîna hukmê Xwedê biparêzin da ku rehmet li we bê kirin.

**11-** Gelî yên ku bawerî anî! Bila qewmek (ji we) qewmekî din biçûk neke û henek nebîne; dibe ku ew ên henek lêbûne ji yên din çêtir be. Bila (ji we) jin jî bi jinên din henekan nekin; dibe ku ew ji wan çêtir bin. Hûn hev eybdar mekin û bi leqebên pîs gazî hev nekin. Piştî îmanê fasiqî çiqas navekî pîs e! Kî ku tobe neke, vêca ha ew, yên zalim bi xwe ne.

يَٓا اَيُّهَا الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا اجْتَنِبُوا كَث۪يرًا مِنَ الظَّنِّۘ اِنَّ بَعْضَ الظَّنِّ
اِثْمٌ وَلَا تَجَسَّسُوا وَلَا يَغْتَبْ بَعْضُكُمْ بَعْضًاۜ اَيُحِبُّ اَحَدُكُمْ
اَنْ يَأْكُلَ لَحْمَ اَخ۪يهِ مَيْتًا فَكَرِهْتُمُوهُۜ وَاتَّقُوا اللّٰهَۜ اِنَّ اللّٰهَ تَوَّابٌ
رَح۪يمٌ ﴿١٢﴾ يَٓا اَيُّهَا النَّاسُ اِنَّا خَلَقْنَاكُمْ مِنْ ذَكَرٍ وَاُنْثٰى
وَجَعَلْنَاكُمْ شُعُوبًا وَقَبَٓائِلَ لِتَعَارَفُواۜ اِنَّ اَكْرَمَكُمْ عِنْدَ اللّٰهِ
اَتْقٰيكُمْۜ اِنَّ اللّٰهَ عَل۪يمٌ خَب۪يرٌ ﴿١٣﴾ قَالَتِ الْاَعْرَابُ اٰمَنَّاۜ قُلْ
لَمْ تُؤْمِنُوا وَلٰكِنْ قُولُٓوا اَسْلَمْنَا وَلَمَّا يَدْخُلِ الْا۪يمَانُ ف۪ي قُلُوبِكُمْۜ
وَاِنْ تُط۪يعُوا اللّٰهَ وَرَسُولَهُ لَا يَلِتْكُمْ مِنْ اَعْمَالِكُمْ شَيْـًٔاۜ اِنَّ اللّٰهَ
غَفُورٌ رَح۪يمٌ ﴿١٤﴾ اِنَّمَا الْمُؤْمِنُونَ الَّذ۪ينَ اٰمَنُوا بِاللّٰهِ وَرَسُولِه۪ ثُمَّ
لَمْ يَرْتَابُوا وَجَاهَدُوا بِاَمْوَالِهِمْ وَاَنْفُسِهِمْ ف۪ي سَب۪يلِ اللّٰهِۜ اُو۬لٰٓئِكَ
هُمُ الصَّادِقُونَ ﴿١٥﴾ قُلْ اَتُعَلِّمُونَ اللّٰهَ بِد۪ينِكُمْۜ وَاللّٰهُ يَعْلَمُ مَا
فِي السَّمٰوَاتِ وَمَا فِي الْاَرْضِۜ وَاللّٰهُ بِكُلِّ شَيْءٍ عَل۪يمٌ ﴿١٦﴾ يَمُنُّونَ
عَلَيْكَ اَنْ اَسْلَمُواۜ قُلْ لَا تَمُنُّوا عَلَيَّ اِسْلَامَكُمْۚ بَلِ اللّٰهُ يَمُنُّ
عَلَيْكُمْ اَنْ هَدٰيكُمْ لِلْا۪يمَانِ اِنْ كُنْتُمْ صَادِق۪ينَ ﴿١٧﴾ اِنَّ
اللّٰهَ يَعْلَمُ غَيْبَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِۜ وَاللّٰهُ بَص۪يرٌ بِمَا تَعْمَلُونَ ﴿١٨﴾



**12**- Gelî yên bawerî anîne! Xwe gelekî ji gumanê biparêzin. Bi rastî qismek ji gumanê heye ku guneh e. Li eybên hev negerin, seba hev mekin (hin ji we li pişt hinan neaxivin). Erê ma bi yekî ji we xweş tê ku yek goştê birayê xwe yê mirî bixwe? Vêca ev li xweşa we naçe. Xwe ji (heramên) Xwedê biparêzin. Bêguman Xweda tobewergir e, dilovîn e.

**13**- Gelî mirovan! Bêguman me hûn ji mêrekî û jinekê afirandine û me hûn kirine qewm û qebîle da ku hûn (maf û hiqûqê) hev nas bikin. Bêguman li cem Xwedê yê herî birûmet ew e ku heq û huquqan bêtir diparêze. BêgumanXwedê zana ye, agahdar e.

**14**- Bedewiyan got: Me bawerî anî. Bibêje: We (hê jî) bawerî neaniye, lê belê bibêjin: "Em teslîm bûne." Hê jî îman neketiye dilê we. Heke hûn bi gotina Xwedê û qasidê wî bikin, Xwedê dê ji karên we tiştekî kêm neke. Bi rastî Xwedê Teala gunehjêbir e, dilovîn e.

**15**- Bi rastî bawermend, ew in ku wan bi Xwedê û resûlê wî îman aniye, piştre jî (di îmana xwe de) hîç nakevin gumanê û di riya Xwedê de bi mal û canên xwe cîhadê dikin. Ha ew in yên rast û durist.

**16**- Bibêje: Erê ma hûn dînê xwe bi Xwedê didine fêrkirin? Rewş ev e ku Xwedê bi tiştê li erd û asimanan, dizane. Xwedê Teala zana ye bi her tiştî.

**17**- Ew ji ber ku misliman bûne minetê li te dikin, bibêje: Mineta mislimanbûna xwe li min mekin. Bi rastî Xwedê Teala minetê li we dike ku bi sebûnet hûn xistine ser riya rast. Eger bi rastî hûn rastgo ne, (divê hûn mineta Xwedê hilînin).

**18**- Bêguman Ellah Teala bi nepeniya tiştê erd û asîmanan dizane. Ellah Teala bîner bi ya ku hûn dikin.

سُورَةُ قٓ مَكِّيَّةٌ وَهِيَ
خَمْسٌ وَاَرْبَعُونَ اٰيَةً

حزب

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ

قٓ وَالْقُرْاٰنِ الْمَج۪يدِ ١ بَلْ عَجِبُٓوا اَنْ جَٓاءَهُمْ مُنْذِرٌ مِنْهُمْ فَقَالَ الْكَافِرُونَ
هٰذَا شَيْءٌ عَج۪يبٌ ٢ ءَاِذَا مِتْنَا وَكُنَّا تُرَابًا ذٰلِكَ رَجْعٌ بَع۪يدٌ ٣ قَدْ
عَلِمْنَا مَا تَنْقُصُ الْاَرْضُ مِنْهُمْ وَعِنْدَنَا كِتَابٌ حَف۪يظٌ ٤ بَلْ كَذَّبُوا
بِالْحَقِّ لَمَّا جَٓاءَهُمْ فَهُمْ ف۪ٓي اَمْرٍ مَر۪يجٍ ٥ اَفَلَمْ يَنْظُرُٓوا اِلَى السَّمَٓاءِ فَوْقَهُمْ
كَيْفَ بَنَيْنَاهَا وَزَيَّنَّاهَا وَمَا لَهَا مِنْ فُرُوجٍ ٦ وَالْاَرْضَ مَدَدْنَاهَا
وَاَلْقَيْنَا ف۪يهَا رَوَاسِيَ وَاَنْبَتْنَا ف۪يهَا مِنْ كُلِّ زَوْجٍ بَه۪يجٍ ٧ تَبْصِرَةً وَذِكْرٰى
لِكُلِّ عَبْدٍ مُن۪يبٍ ٨ وَنَزَّلْنَا مِنَ السَّمَٓاءِ مَٓاءً مُبَارَكًا فَاَنْبَتْنَا بِه۪ جَنَّاتٍ
وَحَبَّ الْحَص۪يدِ ٩ وَالنَّخْلَ بَاسِقَاتٍ لَهَا طَلْعٌ نَض۪يدٌ ١٠ رِزْقًا
لِلْعِبَادِ وَاَحْيَيْنَا بِه۪ بَلْدَةً مَيْتًا كَذٰلِكَ الْخُرُوجُ ١١ كَذَّبَتْ قَبْلَهُمْ قَوْمُ
نُوحٍ وَاَصْحَابُ الرَّسِّ وَثَمُودُ ١٢ وَعَادٌ وَفِرْعَوْنُ وَاِخْوَانُ لُوطٍ
١٣ وَاَصْحَابُ الْاَيْكَةِ وَقَوْمُ تُبَّعٍ كُلٌّ كَذَّبَ الرُّسُلَ فَحَقَّ وَع۪يدِ
١٤ اَفَعَي۪ينَا بِالْخَلْقِ الْاَوَّلِ بَلْ هُمْ ف۪ي لَبْسٍ مِنْ خَلْقٍ جَد۪يدٍ ١٥

## SÛREYÊ QAF

Sûreyê Qaf 45 (çil û pênc) ayet e û li Mekkê daketiye. Navê Sûre ji herfa Qafê tê ku bi wê dest pê dike.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

1- Qaf, bi Qurana Mecîd (rûmetdar) sond be.

2- Bi rastî (xelkê Mekkeyê) şaş maye ku ji nav wan bi xwe, ji bo wan pêxemberekî hişyarker were, vêca kafiran got: Ev, tiştekî ecêb û sosret e...

3- Erê ma ku bimirin û bibin ax qey dîsa (em ê vegerin û sax bibin)? Ev vegereke dûr e (û hîç ne pêkan e ku biqewime).

4- Bêguman Em dizanin ka erdê çi ji bedena wan kêm kiriye û li cem me kitêbeke parêzker heye (ku agahiyan diparêze).

5- Belkî çi gava ku Quran ji wan re hat, wan bawerî pê neanî. Êdî ew di kar û rewşeke tevlîhev de ne.

6- Ma ew li asîmanê di ser xwe re nanêrin ku Me çawa ew (bêstûn) ava kiriye û me ew (bi stêran) xemilandiye û jê re tu kun û kêmasî nîn e.

7- Me erd jî raxistiye û tê de çiyayên mikûm û asê durist kirine. Me tê de ji her cure (giyayên) ku bêhna (mirov) fireh bikin, hêşîn kirine.

8- (Me ev tev kirin), da ji bo her bendeyê ku li Ellah Teala vegere, bibin îbret û bîranîn.

9- Me ji ewran aveke bi bereket daxistiye û me pê baxçe û liba (tene) ku tê çinîn hêşîn kirine.

10- Me darxurmeyên dirêj ku werşiyên (goşiyên) wan yek di ser yekî re ye, pê deranîne.

11- Da ku ji mirovan re bibin rizq û qût. Me bi wê avê welatekî hişkemirî sax (hêşîn) kiriye. Saxkirina miriyan (rabûna wan ji goran jî) her wisa ye.

12- Beriya wan (muşrikên) gelê Nûh, gelê Ressê (bîrê) û gelê Semûd jî (wan bi pêxemberên xwe) bawerî neaniye.

13- Ad, Firewn û xelkê Lût jî (wan bi pêxemberên xwe bawerî neanî).

14- Gelê Eyketê û qewmê Tûbbeyê jî, van tevan bi pêxemberên xwe bawerî neanî û ezabê min ji bo wan heq û pêdivî bû.

15- Erê ma ji afirandina cara pêşîn em westiyane (heta ku em nikaribin dîsa wan sax bikin)? Nexêr, ew ji afirandineke nû bêbawer û gumandar in.

وَلَقَدْ خَلَقْنَا الْاِنْسَانَ وَنَعْلَمُ مَا تُوَسْوِسُ بِهٖ نَفْسُهُۚ وَنَحْنُ اَقْرَبُ
اِلَيْهِ مِنْ حَبْلِ الْوَرٖيدِ ﴿١٦﴾ اِذْ يَتَلَقَّى الْمُتَلَقِّيَانِ عَنِ الْيَمٖينِ وَعَنِ
الشِّمَالِ قَعٖيدٌ ﴿١٧﴾ مَا يَلْفِظُ مِنْ قَوْلٍ اِلَّا لَدَيْهِ رَقٖيبٌ عَتٖيدٌ ﴿١٨﴾ وَجَٓاءَتْ
سَكْرَةُ الْمَوْتِ بِالْحَقِّۜ ذٰلِكَ مَا كُنْتَ مِنْهُ تَحٖيدُ ﴿١٩﴾ وَنُفِخَ فِي الصُّورِۜ
ذٰلِكَ يَوْمُ الْوَعٖيدِ ﴿٢٠﴾ وَجَٓاءَتْ كُلُّ نَفْسٍ مَعَهَا سَٓائِقٌ وَشَهٖيدٌ ﴿٢١﴾ لَقَدْ
كُنْتَ فٖي غَفْلَةٍ مِنْ هٰذَا فَكَشَفْنَا عَنْكَ غِطَٓاءَكَ فَبَصَرُكَ الْيَوْمَ حَدٖيدٌ ﴿٢٢﴾
وَقَالَ قَرٖينُهُ هٰذَا مَا لَدَيَّ عَتٖيدٌۜ ﴿٢٣﴾ اَلْقِيَا فٖي جَهَنَّمَ كُلَّ كَفَّارٍ عَنٖيدٍۙ ﴿٢٤﴾
مَنَّاعٍ لِلْخَيْرِ مُعْتَدٍ مُرٖيبٍۙ ﴿٢٥﴾ اَلَّذٖي جَعَلَ مَعَ اللّٰهِ اِلٰهًا اٰخَرَ فَاَلْقِيَاهُ فِي
الْعَذَابِ الشَّدٖيدِ ﴿٢٦﴾ قَالَ قَرٖينُهُ رَبَّنَا مَٓا اَطْغَيْتُهُ وَلٰكِنْ كَانَ فٖي ضَلَالٍ
بَعٖيدٍ ﴿٢٧﴾ قَالَ لَا تَخْتَصِمُوا لَدَيَّ وَقَدْ قَدَّمْتُ اِلَيْكُمْ بِالْوَعٖيدِ ﴿٢٨﴾
مَا يُبَدَّلُ الْقَوْلُ لَدَيَّ وَمَٓا اَنَا بِظَلَّامٍ لِلْعَبٖيدِ ﴿٢٩﴾ يَوْمَ نَقُولُ لِجَهَنَّمَ
هَلِ امْتَلَأْتِ وَتَقُولُ هَلْ مِنْ مَزٖيدٍ ﴿٣٠﴾ وَاُزْلِفَتِ الْجَنَّةُ لِلْمُتَّقٖينَ
غَيْرَ بَعٖيدٍ ﴿٣١﴾ هٰذَا مَا تُوعَدُونَ لِكُلِّ اَوَّابٍ حَفٖيظٍۚ ﴿٣٢﴾ مَنْ خَشِيَ
الرَّحْمٰنَ بِالْغَيْبِ وَجَٓاءَ بِقَلْبٍ مُنٖيبٍ ﴿٣٣﴾ اُدْخُلُوهَا بِسَلَامٍۜ
ذٰلِكَ يَوْمُ الْخُلُودِ ﴿٣٤﴾ لَهُمْ مَا يَشَٓاؤُ۫نَ فٖيهَا وَلَدَيْنَا مَزٖيدٌ ﴿٣٥﴾



**16-** Sond be, bi rastî Me însan afirandiye û ya ku nefsa wî jê re dibêje û ya ku dikeve dilê wî jî em dizanin û em ji rah-jiyana (damara mirinê) wî jî bêhtir nêzîkî wî ne.

**17-** Wê demê li rast û çepê însên du melayîketên rûniştî ne ku her hal û hereketên wî dinivîsin.

**18-** Însan çi bibêje, her li balê (du melayîketên) çavdêr û amadekar hene (ku emelên wî tomar dikin).

**19-** Serxweşiya mirinê bi fermana heq hat. Hey însan ha ev e, ya ku tu jê direviyayî!

**20-** Di sûrê de hate pifkirin, ha ev e roja ku soza wê hatiye dayîn.

**21-** Her kes (çi baş çi xerab), digel ajoyekî û şahidekî (du melayîket; yek insên dajo meydana heşrê, êdî şahdehiyê li ser dide) tê (heşrê).

**22-** (Jê re dê wiha bê gotin: Hey mirov!) Sond be ku (li dinyayê) haya te ji vê tune bû, me perde ji ser çavê te hilanî. Êdî îro dîtina te pir dijwar e

**23-** Hevalê wî (melayîketê hesabgir) dê bibêje: Ha ev (kitêba kar û kiryarê wî) li cem min hazir e.

**24-** (Xwedê Teala dê ji her du firîşteyên saiq û şahid re bibêje) Heydê her kafirê rikdar biavêjin dojehê...

**25-** Ew ên ku li ber qenciyê dibûn asteng, yên zordar û şubhekar...

**26-** Ew ê ku digel Ellah Teala ji xwe re îlahekî din girtî, wî biavêjin ezabê dijwar.

**27-** Hevalê muşrik (şeytan) dê bibêje: Xwedayê me! Min ew ji rê dernexistiye. Lê belê ew bi xwe di nava jirêderketineke dûrî heq de bû.

**28-** Di wê navê de (Xwedê dê) bibêje: Li bal min minaqeşeyê mekin! Min hê berê (li ser zimanê pêxemberê xwe) ji we re haydarî şandibû.

**29-** Li bal min hukim nayê guherandin û ez ne ew im ku zilmê li bendeyên (xwe) bikim.

**30-** Wê rojê, em ê ji cehenemê re bibêjin: Erê ma tu tije nebûyî? Ew jî dê bibêje: Ma hê jî tune ye?

**31-** Cenet jî ji mutteqiyan re tê nêzkirin û ew ne dûr e.

**32-** Ev ew cenet e ku ji bo her bendeyê tobedarê (li ser dînê xwe) parêzkar, peyman pê hatiye dayîn.

**33-** Ew ê ku di nependî de (ku kes li cem tune be) ji Xwedayê bexşende bitirse û bi dilekî tobeker were cem Xwedê Teala!

**34-** (Ji bihiştiyan re tê gotin:) Bi selametî herin bihiştê. Ha ev, ew roja her û herî ye!

**35-** Ji bo cenetiyan tê de tiştê ew bixwazin ji wan re heye û li cem hê ji wê zêdetir jî heye.

وَكَمْ اَهْلَكْنَا قَبْلَهُمْ مِنْ قَرْنٍ هُمْ اَشَدُّ مِنْهُمْ بَطْشًا فَنَقَّبُوا
فِى الْبِلَادِؕ هَلْ مِنْ مَح۪يصٍ ﴿٣٦﴾ اِنَّ ف۪ى ذٰلِكَ لَذِكْرٰى لِمَنْ كَانَ
لَهُ قَلْبٌ اَوْ اَلْقَى السَّمْعَ وَهُوَ شَه۪يدٌ ﴿٣٧﴾ وَلَقَدْ خَلَقْنَا السَّمٰوَاتِ
وَالْاَرْضَ وَمَا بَيْنَهُمَا ف۪ى سِتَّةِ اَيَّامٍۗ وَمَا مَسَّنَا مِنْ لُغُوبٍ ﴿٣٨﴾ فَاصْبِرْ
عَلٰى مَا يَقُولُونَ وَسَبِّحْ بِحَمْدِ رَبِّكَ قَبْلَ طُلُوعِ الشَّمْسِ
وَقَبْلَ الْغُرُوبِۚ ﴿٣٩﴾ وَمِنَ الَّيْلِ فَسَبِّحْهُ وَاَدْبَارَ السُّجُودِ ﴿٤٠﴾ وَاسْتَمِعْ
يَوْمَ يُنَادِ الْمُنَادِ مِنْ مَكَانٍ قَر۪يبٍۙ ﴿٤١﴾ يَوْمَ يَسْمَعُونَ الصَّيْحَةَ بِالْحَقِّؕ
ذٰلِكَ يَوْمُ الْخُرُوجِ ﴿٤٢﴾ اِنَّا نَحْنُ نُحْي۪ وَنُم۪يتُ وَاِلَيْنَا الْمَص۪يرُۙ ﴿٤٣﴾ يَوْمَ
تَشَقَّقُ الْاَرْضُ عَنْهُمْ سِرَاعًاؕ ذٰلِكَ حَشْرٌ عَلَيْنَا يَس۪يرٌ ﴿٤٤﴾ نَحْنُ اَعْلَمُ بِمَا
يَقُولُونَ وَمَٓا اَنْتَ عَلَيْهِمْ بِجَبَّارٍ فَذَكِّرْ بِالْقُرْاٰنِ مَنْ يَخَافُ وَع۪يدِ ﴿٤٥﴾

سُورَةُ الذَّارِيَاتِ مَكِّيَّةٌ
وَهِيَ سِتُّونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ

وَالذَّارِيَاتِ ذَرْوًاۙ ﴿١﴾ فَالْحَامِلَاتِ وِقْرًاۙ ﴿٢﴾ فَالْجَارِيَاتِ يُسْرًاۙ ﴿٣﴾
فَالْمُقَسِّمَاتِ اَمْرًاۙ ﴿٤﴾ اِنَّمَا تُوعَدُونَ لَصَادِقٌۙ ﴿٥﴾ وَاِنَّ الدّ۪ينَ لَوَاقِعٌۜ ﴿٦﴾

36- Me beriya wan (muşrikên) çiqas milet birine helakê ku ew ji van xurttir bûn jî, vêca ew li welatan digeriyan (da ku ji mirinê xelas bibin. Erê ma xelasî heye?

37- Bêguman di vê de, ji bo her kesê ku jê re dilekî bîner hebe yan jî guhveçîn be şîret û bîranîn e.

38- Sond be, Me erd û asîman û yên ku di navbera wan de hene di şeş rojan de afirandine û tu westandin jî negihîşte me.

39- Vêca (hey Muhemmed) li hemberî gotinên wan xwe ragire. Berî roj hilbê û here ava hemdê Xwedayê xwe bike û ji her kemasiyan wî pak bidêre.

40- Di hinekî ji şevê de û piştî nimêjan jî wî pak bidêre.

41-Guhdar be, li wê roja ku banghildêr ji cihekî nêzîk ve gazî bike.

42- Ew roj, mirov dê vî dengê heqiyê bibihîzin. Ha ev e, ew roja derketina ji goran.

43- Bêguman yê sax dike, yê dimirîne her em in û lêvehewîn jî her bi bal me ve ye.

44- Wê rojê, erd dê li wan şeq bibe, ew bi lez dê ji goran derkevin. Ha ev civandineke ku li ber me hêsan e.

45- Em a ku ew dibêjin baş dizanin. Tu li ser wan ne zordest î (ku bi zorê wan misliman bikî), tu tenê bi vê Quranê ew kesê ku ji ezabê min bitirse, şîret bike.

## SÛREYÊ ZARIYAT

Sûreyê Zariyat 60 (şêst) ayet e. Li Mekkê daketiye û navê sûre ji ayeta pêşîn tê ku tê de bêjeya Zariyat derbas bûye û bi mehneya "bayê tozbelav" e.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

1- Sond be, bi bayên belavker...

2- Bi ewrên baranhilgir...

3- Bi keştiyên ku bi hêsanî digerin...

4- Bi melayîketên ku kar û bar parve dikin...

5- Bi rastî ya ku hûn pê hatine sozdayîn (ji mirin, vejînê) heq û rast e.

6- Bi rastî roja cezadanê (xelatkirin û celatê) dê teqez bê.

وَالسَّمَاءِ ذَاتِ الْحُبُكِ ﴿٧﴾ اِنَّكُمْ لَفِى قَوْلٍ مُخْتَلِفٍ ﴿٨﴾ يُؤْفَكُ عَنْهُ
مَنْ اُفِكَ ﴿٩﴾ قُتِلَ الْخَرَّاصُونَ ﴿١٠﴾ اَلَّذِينَ هُمْ فِى غَمْرَةٍ سَاهُونَ ﴿١١﴾
يَسْـَٔلُونَ اَيَّانَ يَوْمُ الدِّينِ ﴿١٢﴾ يَوْمَ هُمْ عَلَى النَّارِ يُفْتَنُونَ ﴿١٣﴾ ذُوقُوا
فِتْنَتَكُمْ هٰذَا الَّذِى كُنْتُمْ بِهِ تَسْتَعْجِلُونَ ﴿١٤﴾ اِنَّ الْمُتَّقِينَ فِى
جَنَّاتٍ وَعُيُونٍ ﴿١٥﴾ اٰخِذِينَ مَا اٰتٰيهُمْ رَبُّهُمْ اِنَّهُمْ كَانُوا قَبْلَ ذٰلِكَ
مُحْسِنِينَ ﴿١٦﴾ كَانُوا قَلِيلًا مِنَ الَّيْلِ مَا يَهْجَعُونَ ﴿١٧﴾ وَبِالْاَسْحَارِ هُمْ
يَسْتَغْفِرُونَ ﴿١٨﴾ وَفِى اَمْوَالِهِمْ حَقٌّ لِلسَّائِلِ وَالْمَحْرُومِ ﴿١٩﴾ وَفِى
الْاَرْضِ اٰيَاتٌ لِلْمُوقِنِينَ ﴿٢٠﴾ وَفِى اَنْفُسِكُمْ اَفَلَا تُبْصِرُونَ ﴿٢١﴾
وَفِى السَّمَاءِ رِزْقُكُمْ وَمَا تُوعَدُونَ ﴿٢٢﴾ فَوَرَبِّ السَّمَاءِ وَالْاَرْضِ
اِنَّهُ لَحَقٌّ مِثْلَ مَا اَنَّكُمْ تَنْطِقُونَ ﴿٢٣﴾ هَلْ اَتٰيكَ حَدِيثُ ضَيْفِ
اِبْرٰهِيمَ الْمُكْرَمِينَ ﴿٢٤﴾ اِذْ دَخَلُوا عَلَيْهِ فَقَالُوا سَلَامًا قَالَ سَلَامٌ قَوْمٌ
مُنْكَرُونَ ﴿٢٥﴾ فَرَاغَ اِلٰى اَهْلِهِ فَجَاءَ بِعِجْلٍ سَمِينٍ ﴿٢٦﴾ فَقَرَّبَهُ اِلَيْهِمْ
قَالَ اَلَا تَأْكُلُونَ ﴿٢٧﴾ فَاَوْجَسَ مِنْهُمْ خِيفَةً قَالُوا لَا تَخَفْ وَبَشَّرُوهُ
بِغُلَامٍ عَلِيمٍ ﴿٢٨﴾ فَاَقْبَلَتِ امْرَاَتُهُ فِى صَرَّةٍ فَصَكَّتْ وَجْهَهَا وَقَالَتْ
عَجُوزٌ عَقِيمٌ ﴿٢٩﴾ قَالُوا كَذٰلِكِ قَالَ رَبُّكِ اِنَّهُ هُوَ الْحَكِيمُ الْعَلِيمُ ﴿٣٠﴾

قَالَ

**7**- Sond bi asîmanê xwedan rêk...

**8**- Bi rastî jî hûn (der barê pêxember û Quranê de) di nav gotineke bêser û ber de ne.

**9**- Ew ê ku berê wî (ji îmanê hatiye) vegerandin, dê berê wî jê were vegerandin.

**10**- Lanet li wan derewînan be (ew ên ku der barê Pêxember û Quranê de her car gotinekê dibêjin)

**11**- Ew ên ku di nav tarîtiya nezanînê de (ji hukmên dînî) bêhay mane.

**12**- Ew dipirsin ka roja cezadanê kengê ye?

**13**- Roja (cezadanê) ew roj e ku ew di êgir de têne şewitandin.

**14**- (Di dema îşkenceyê de ji wan re tê gotin:) Ezabê xwe tehm bikin! Ha ev e, ew ezabê ku we bi lez dixwest were!

**15**- Bêguman ên mutteqî di nava baxçe û kaniyan de ne.

**16**- Ya ku Xwedayê wan daye wan, werdigrin. Bi rastî ew beriya vêga mirovên qencîkar bûn.

**17**- Ew bi şev pir hindikî radizan (wextên din jî nimêj û îbadet dikirin).

**18**- Di çaxê spêdê de jî îstixfar dikirin (lêborîna gunehên xwe dixwestin).

**19**- Di malên wan de ji xwestek û bêparan re heqekî (kifşkirî) hebû ku didan.

**20**- Li ser erdê ji bo mumînan nîşan(ên ku qudreta Xwedê nîşan didin) hene.

**21**- Di nefsa we bi xwe de jî (nîşan û îbret hene) ma hûn nabînin?

**22**- Rizqê we û tiştên ku peymana wan ji we re tê dayîn jî, li asîman in.

**23**- Bi Xwedayê asîman û erdê sond be, ev peymana (ku ji we re tê dayîn) wekî peyivîna we, rast û heq e

**24**- Erê ma behsa mêvanên Îbrahîm ên birûmet negihîştiye te?

**25**- Dema çûn cem Îbrahîm, silav lê kirin. Îbrahîm jî silava wan vegirt û got: Hûn biyanî ne (em hev nas bikin).

**26**- Vêca Îbrahîm bi lez çû rexê malê û goştê golikekî qelew (û biraştî) anî.

**27**- Vêca Îbrahîm ew (goşt) li ber wan danî û ji wan re got: De kerem bikin bixwin.

**28**- (Dema Îbrahîm dît ku ew naxwin) di dilê xwe de ji wan tirsiya. Jê re gotin: Metirse; wan mizgîna kurekî zana dayê.

**29**- Kebaniya Îbrahîm berê xwe da wan, vêca bi qîrîn li rûyê xwe da û bi heyret got: (Ez) pîrejinek im ku zarok ji min re çênabin!

**30**- Melayîketan got: Xwedayê te wisa gotiye, (ev îradeya wî ye, tu jî jê şaş nemîne). Bêguman Xwedê Teala, her ew e yê xweyhîkmet, ê zana.

**31**- Îbrahîm (piştî zanî ku ew melayîket in) got: Gelî qasidan! Nexwe hûn ji bo çi hatine?

**32**- Gotin: Em ji bo (cezadana) qewmekî gunehkar hatine.

**33**- Em hatine da ku bi ser wan de kevirên ji heriyê bibarînin.

**34**- Ew (kevir) li cem Xwedayê te ji bo musrifan hatine nîşankirin (li ser her kevirekî navên yekî ji wan nivîsandî bû).

**35**- Vêca Me mumînên ku li nav wan bûn, hemû deranîn.

**36**- Jixwe ji maleke misliman pê ve li wir nebû.

**37**- Ji bo yên ku ji ezabê dijwar ditirsin, me li wir nîşanek (li ser helaka kafiran) hişt.

**38**- Di (qiseya) Mûsa de jî (îbret hene) wê dema Me ew bi delîleke aşkera û ronak bi bal Firewn ve şand.

**39**- Firewn digel leşkerên xwe berê xwe (ji îmanê) vegerand û got: Mûsa, ya sêrbaz e, yan jî dîn e.

**40**- Paşê me Firewn û leşkerên wî girtin, vêca me ew di behrê werkirin, ku ew (bi sebûnet kufr û tuxyanê) lomelêbûyî hat.

**41**- Di Ad de jî (îbret hene). Me ji bo (helaka) wan bayê bêbereket û xerabker şandin.

**42**- Tiştê ku bi ser de çûye zindî nehiştiye, her ew kiriye mîna hestiyê rizî. Yan jî mîna xweliya li ber ba ketî

**43**- Di (helaka) Semûdî de jî (îbret hene), dema ji wan re hate gotin: Heta demekê xweş bijîn.

**44**- Ew li ber fermana Xwedayê xwe rabûn, vêca birûskan (ezab), li ber çavên wan li wan da.



قَالَ فَمَا خَطْبُكُمْ اَيُّهَا الْمُرْسَلُونَ ﴿٣١﴾ قَالُوا اِنَّا اُرْسِلْنَا اِلٰى قَوْمٍ
مُجْرِمِينَ ﴿٣٢﴾ لِنُرْسِلَ عَلَيْهِمْ حِجَارَةً مِنْ طِينٍ ﴿٣٣﴾ مُسَوَّمَةً عِنْدَ
رَبِّكَ لِلْمُسْرِفِينَ ﴿٣٤﴾ فَاَخْرَجْنَا مَنْ كَانَ فِيهَا مِنَ الْمُؤْمِنِينَ ﴿٣٥﴾
فَمَا وَجَدْنَا فِيهَا غَيْرَ بَيْتٍ مِنَ الْمُسْلِمِينَ ﴿٣٦﴾ وَتَرَكْنَا فِيهَا اٰيَةً
لِلَّذِينَ يَخَافُونَ الْعَذَابَ الْاَلِيمَ ﴿٣٧﴾ وَفِي مُوسٰى اِذْ اَرْسَلْنَاهُ
اِلٰى فِرْعَوْنَ بِسُلْطَانٍ مُبِينٍ ﴿٣٨﴾ فَتَوَلّٰى بِرُكْنِهِ وَقَالَ سَاحِرٌ اَوْ مَجْنُونٌ
﴿٣٩﴾ فَاَخَذْنَاهُ وَجُنُودَهُ فَنَبَذْنَاهُمْ فِي الْيَمِّ وَهُوَ مُلِيمٌ ﴿٤٠﴾ وَفِي عَادٍ
اِذْ اَرْسَلْنَا عَلَيْهِمُ الرِّيحَ الْعَقِيمَ ﴿٤١﴾ مَا تَذَرُ مِنْ شَيْءٍ اَتَتْ عَلَيْهِ
اِلَّا جَعَلَتْهُ كَالرَّمِيمِ ﴿٤٢﴾ وَفِي ثَمُودَ اِذْ قِيلَ لَهُمْ تَمَتَّعُوا حَتّٰى حِينٍ
﴿٤٣﴾ فَعَتَوْا عَنْ اَمْرِ رَبِّهِمْ فَاَخَذَتْهُمُ الصَّاعِقَةُ وَهُمْ يَنْظُرُونَ ﴿٤٤﴾
فَمَا اسْتَطَاعُوا مِنْ قِيَامٍ وَمَا كَانُوا مُنْتَصِرِينَ ﴿٤٥﴾ وَقَوْمَ نُوحٍ مِنْ قَبْلُ
اِنَّهُمْ كَانُوا قَوْمًا فَاسِقِينَ ﴿٤٦﴾ وَالسَّمَاءَ بَنَيْنَاهَا بِاَيْدٍ وَاِنَّا لَمُوسِعُونَ
﴿٤٧﴾ وَالْاَرْضَ فَرَشْنَاهَا فَنِعْمَ الْمَاهِدُونَ ﴿٤٨﴾ وَمِنْ كُلِّ شَيْءٍ خَلَقْنَا
زَوْجَيْنِ لَعَلَّكُمْ تَذَكَّرُونَ ﴿٤٩﴾ فَفِرُّوا اِلَى اللّٰهِ اِنّ۪ي لَكُمْ مِنْهُ نَذِيرٌ
مُبِينٌ ﴿٥٠﴾ وَلَا تَجْعَلُوا مَعَ اللّٰهِ اِلٰهًا اٰخَرَ اِنّ۪ي لَكُمْ مِنْهُ نَذِيرٌ مُبِينٌ ﴿٥١﴾

**45**- Wan ne dikariya rabin (ser xwe ku ji ber ezab birevin) ne jî arîkariya wan dihat kirin.

**46**- Beriya wan, me qewmê Nûh jî bire helakê. Bi rastî ew civateke jirêderketî bû.

**47**- Me asîman bi hêz ava kiriye û bi rastî em wî hê jî fireh dikin.

**48**- Me erd jî raxistiye (da bi kêrî jiyanê bê), çi xweş raêxer in em!

**49**- Me ji her tiştî cotek afirandiye da ku hûn bifikirin û şîret wergirin.

**50**- Nexwe bi bal Xwedê ve bibezin, bi rastî ez ji cem Wî, ji bo we hişyarkerekî aşkera me.

**51**- Hûn digel Ellah Teala xwedayekî din ji xwe re megrin. Bêguman ez ji cem Wî, ji bo we agahdêrekî aşkera me.

كَذٰلِكَ مَٓا اَتَى الَّذ۪ينَ مِنْ قَبْلِهِمْ مِنْ رَسُولٍ اِلَّا قَالُوا سَاحِرٌ
اَوْ مَجْنُونٌ ﴿٥٢﴾ اَتَوَاصَوْا بِه۪ۚ بَلْ هُمْ قَوْمٌ طَاغُونَ ﴿٥٣﴾ فَتَوَلَّ عَنْهُمْ
فَمَٓا اَنْتَ بِمَلُومٍ ﴿٥٤﴾ وَذَكِّرْ فَاِنَّ الذِّكْرٰى تَنْفَعُ الْمُؤْمِن۪ينَ ﴿٥٥﴾ وَمَا
خَلَقْتُ الْجِنَّ وَالْاِنْسَ اِلَّا لِيَعْبُدُونِ ﴿٥٦﴾ مَٓا اُر۪يدُ مِنْهُمْ مِنْ رِزْقٍ
وَمَٓا اُر۪يدُ اَنْ يُطْعِمُونِ ﴿٥٧﴾ اِنَّ اللّٰهَ هُوَ الرَّزَّاقُ ذُو الْقُوَّةِ الْمَت۪ينُ
﴿٥٨﴾ فَاِنَّ لِلَّذ۪ينَ ظَلَمُوا ذَنُوبًا مِثْلَ ذَنُوبِ اَصْحَابِهِمْ فَلَا يَسْتَعْجِلُونِ
﴿٥٩﴾ فَوَيْلٌ لِلَّذ۪ينَ كَفَرُوا مِنْ يَوْمِهِمُ الَّذ۪ي يُوعَدُونَ ﴿٦٠﴾




بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ

وَالطُّورِ ﴿١﴾ وَكِتَابٍ مَسْطُورٍ ﴿٢﴾ ف۪ي رَقٍّ مَنْشُورٍ ﴿٣﴾ وَالْبَيْتِ الْمَعْمُورِ
﴿٤﴾ وَالسَّقْفِ الْمَرْفُوعِ ﴿٥﴾ وَالْبَحْرِ الْمَسْجُورِ ﴿٦﴾ اِنَّ عَذَابَ رَبِّكَ لَوَاقِعٌ
﴿٧﴾ مَا لَهُ مِنْ دَافِعٍ ﴿٨﴾ يَوْمَ تَمُورُ السَّمَٓاءُ مَوْرًا ﴿٩﴾ وَتَس۪يرُ الْجِبَالُ سَيْرًا
﴿١٠﴾ فَوَيْلٌ يَوْمَئِذٍ لِلْمُكَذِّب۪ينَ ﴿١١﴾ اَلَّذ۪ينَ هُمْ ف۪ي خَوْضٍ يَلْعَبُونَ ﴿١٢﴾ يَوْمَ
يُدَعُّونَ اِلٰى نَارِ جَهَنَّمَ دَعًّا ﴿١٣﴾ هٰذِهِ النَّارُ الَّت۪ي كُنْتُمْ بِهَا تُكَذِّبُونَ ﴿١٤﴾

اَفَسِحْرٌ

**52**- Her wiha çiqas pêxemberek ji yên beriya wan re hatibe, her gotine; sêrbaz e, yan jî dîn e.

**53**- Erê ma wan wesiyeta vê (derewîndêriyê) li hev kiriye? Nexêr, belkî ew civateke serxweveçûyî ne.

**54**- Vêca berê xwe ji wan vegerîne. Êdî gazin dê ji te neyê kirin.

**55**- Tu li wan pend û şîretan bike, vêca şîret teqez feydeyê dide mumînan.

**56**- Min cin û însan bes ji bo ku îbadeta min bikin afirandine.

**57**- Ez ji wan tu rizqekî naxwazim û ez ji wan naxwazim ku ew xwarinê jî bidin min.

**58**- Bêşik Ellah Teala, her Ew e yê pir rizq dide û yê xwediyê hêza xurt.

**59**- Bêguman ji bo yên sitemkarî kirin jî parek ji ezab heye mîna ezabê yên beriya wan. Nexwe bila lezê li hatina ezab nekin!

**60**- Vêca wax li halê wan kafiran, ji ber (dijwariya) wê roja ku soza wê ji wan re hatiye dayîn!

## SUREYÊ ET-TÛR

Sûreyê Tûr 49 (çil û neh) ayet e. Li Mekkê daketiye û navê sûre ji ayeta pêşîn hatiye ku tê de bêjeya Tûr derbas bûye ku bi mehneya çiya ye.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

**1**- Bi Tûrê (ew çiyayê ku Xwedê li ser digel Mûsa axiftiye)

**2**- Bi kitêba ku rêze rêz hatiye nivîsandin...

**3**- Li ser çermê tenikê vekirî...

**4**- Bi wê Mala ku bi melayîketan ava ye (ku Beytul Me'mûr e)...

**5**- Bi banê (asîmanê) bilindkirî...

**6**- Bi wê deryaya ku hatiye girêdan. Yan jî, bi wê behra ku bi agir tê germkirin.

**7**- Sond be, teqez ezabê Xwedayê te dê bê.

**8**- Tu paşbirek (yê ku dide paş) jê re nîn e.

**9**- Wê rojê asîman dê li hev bikeve, bikeye û şelq lê bikeve...

**10**- Dê çiya ji cihê xwe biçin, (mîna ewran bigerin).

**11**- Vêca wê rojê, wax li halê bêbaweran!

**12**- Ew ên ku xwe di pûçî û batilî de berdidin û bi dîn dileyîzin.

**13**- Wê rojê, ew bi dijwarî bi bal agirê dojehê ve têne kêşandin,

**14**- (Dergehvanên dojehê dê ji wan re bibêjin) Ha ev e ew agirê ku we bawerî pê nedianî.

افسحر هذا ام انتم لا تبصرون ﴿١٥﴾ اصلوها فاصبروا او
لا تصبروا سواء عليكم انما تجزون ما كنتم تعملون
﴿١٦﴾ ان المتقين في جنات ونعيم ﴿١٧﴾ فاكهين بما اتيهم
ربهم ووقيهم ربهم عذاب الجحيم ﴿١٨﴾ كلوا واشربوا
هنيئا بما كنتم تعملون ﴿١٩﴾ متكئين على سرر مصفوفة
وزوجناهم بحور عين ﴿٢٠﴾ والذين امنوا واتبعتهم ذريتهم
بايمان الحقنا بهم ذريتهم وما التناهم من عملهم من شيء
كل امرئ بما كسب رهين ﴿٢١﴾ وامددناهم بفاكهة ولحم مما
يشتهون ﴿٢٢﴾ يتنازعون فيها كاسا لا لغو فيها ولا تاثيم
﴿٢٣﴾ ويطوف عليهم غلمان لهم كانهم لؤلؤ مكنون ﴿٢٤﴾ واقبل
بعضهم على بعض يتساءلون ﴿٢٥﴾ قالوا انا كنا قبل في اهلنا
مشفقين ﴿٢٦﴾ فمن الله علينا ووقينا عذاب السموم ﴿٢٧﴾ انا كنا
من قبل ندعوه انه هو البر الرحيم ﴿٢٨﴾ فذكر فما انت بنعمت
ربك بكاهن ولا مجنون ﴿٢٩﴾ ام يقولون شاعر نتربص به
ريب المنون ﴿٣٠﴾ قل تربصوا فاني معكم من المتربصين ﴿٣١﴾

**15-** Erê ma ev sêrebazî ye, yan jî ma hûn nabînin?

**16-** De herin dojehê, vêca hûn sebirê bikêşin û nekêşin ji bo we her wekhev e. Bi rastî hûn cezayê ya ku we dikir, dikişînin.

**17-** Bêguman yên mutteqî di nav dehl (bostan) û xweşiyan de ne.

**18-** Ew bi ya ku Xwedayê wan daye wan kêfxweş dibin û Xwedê ew ji ezabê dojehê parastine.

**19-** (Dergehvanên bihiştê ji wan re dibêjin) Bi sedema kar û kiryarên ku we kirin; bixwin, vexwin û ji bo we noşîcan be.

**20-** Li ser textên rêzerêzbûyî paldayî ne û Me ew bi horiyên çavgir re zewicandine.

**21-** Ew ên ku wan bawerî aniye û zuriyeta wan jî bi bawerî dabe pey şopa wan, em ê zuriyeta wan jî bigihînine wan û em ji mukafata wan jî tiştekî kêm nakin. Her kes di gerewa keda xwe de ye.

**22-** Em bi fêkî û goştê ku dilê wan dibijiyê piştgiriya wan dikin (bi zêdeyî didin wan).

**23-** Ew tê de qedehên meyê ji dest hev digirin, di wê meyê de ne axaftineke kelevajî ne jî tê de gunehkarî (serxweşî) heye.

**24-** Li ber destên wan xortên nûgihîştî ji bo xizmetê digerin, her wekî ew sedefên di qotîkên xwe de veşartî ne.

**25-** Ew berê xwe didin hev û (rewşa xwe ya li dinyayê) ji hev dipirsin.

**26-** (Sedema gihîştina xwe ya van xweşiyan îşaret dikin û) Dibêjin: Bi rastî em li dinyayê di nav malbata xwe de (ji ezabê Xwedê Teala) bitirs bûn.

**27-** Vêca Ellah Teala kerem li me kir û em ji ezabê semûmê (germebayê) parastin.

**28-** Bi rastî em li dinyayê li ber Xwedê Teala digeriyan (da ku me ji ezabê germebayê biparêzê). Bi rastî her Xwedê ye, yê xwedankerem û dilovîn.

**29-** (Ya Muhemmed!) Vêca tu (bi Quranê) şîretan (li qewmê xwe) bike, bîne bîra wan. Tu bi saya Xwedayê xwe, ne kahin î, ne jî dîn î.

**30-** Belkî ew (muşrik) dibêjin: Muhemmed şair e, em li hêviya bûyerên zemên in (ka dê çi bê serê wî).

**31-** Bibêje: Hûn li hêviyê bin. Ez jî digel we li hêviyê me (ka Xwedê dê kê helak bike).



32- Belkî aqilê wan fermana wan (bi van gotinên çewt) dike. Nexêr, belkî ew civateke serxweveçûyî ne.

33- Yan jî ew dixwazin bibêjin, Muhemmedî Quran ji ber xwe ve lê aniye! Nexêr, belkî ew bawerî nayînin.

34- Eger bi rastî ew rast dibêjin, de bila ew jî gotineke mîna Quranê bînin.

35- Gelo ew bêyî xaliqekî hatine xuliqandin? Yan jî wan bi xwe, xwe xuliqandiye?

36- Ma wan erd û asîman afirandine? Nexêr, belkî ew (derewkar in ku) bawerî nayînin.

37- Yan jî ma xezîneyên Xwdayê te li cem wan e? Yan jî ma ew in li ser her tiştî desthilatdar (ku çi bivên wê bikin)?

38- Yan jî ji bo wan hin sêlim (derence) hene ku hildikişin û bi wan li razên veşarî guhdarî dikin? Eger wisa be, de bila guhdêrê wan delîleke aşkera bîne.

39- Yan jî, ma keç ên Xwedê ne û kur jî yên we ne?

40- Yan jî tu (ji bo teblîxa ku ji wan re dikî) ji wan heqdestekê dixwazî, ji ber vê yekê ew dikevin bin bêşeke giran (û ji lew re misliman nabin)?

41- Yan jî zanîna xeybê li cem wan e ku vêca ew wê dinivîsin (ku bi wê dikarin bi pêxember re têbikoşin)?!

42- Yan jî ew dixwazin kemînekê li ber te vedin. Veca ew ên ku kafir in, kemîn li ber wan ew bi xwe hatiye vedan.

43- Yan jî ji bilî Ellah Teala ji bo wan îlahek heye? Ellah Teala ji wan (pût)ên ku jê re dikin şerîk dûr û pak e.

44- Eger derewkar bibînin ku ji esmên parçeyek (bi ser wan de) ketiye, dê bibêjin: Ev ewrekî bi ser hev de kombûyî ye (û ew dîsa îman nayînin).

45- Êdî wan di halê wan de bihêle, heta ku ew çav bi wê roja xwe bikevin, ya ku ew tê de bêne bêhişkirin.

46- Wê rojê, kemîna wan dê tu feydeyê nede wan û arîkariya wan jî dê neyê kirin.

47- Bêguman ji bo yên zilim kirin ezabekî ji bilî ezabê axiretê, ji bo wan heye, lê belê pirên wan nizanin.

48- Vêca li ser hukmê Xwedayê xwe sebirê bikêşe (û bêhna xwe fireh bike). Bi rastî tu di bin çavdêriya me de yî (em te diparêzin). Gava ku tu (ji xewê) rabî jî şukra Xwedayê xwe bike û ji her kêmasiyê wî pak bidêre.

49- Di hinekî ji şevê de û piştî windabûna stêran jî, tu Xwedayê xwe (ji her kêmasiyê) pak bidêre.

## SUREYÊ EN-NECIM

Sûreyê Necim 62 (şêst û du) ayet e. Li Mekkê daketiye. Sûre, navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de bêjeya Necim derbas bûye û bi mehneya stêr e.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

1- Sond bi wê stêra dema diçe ava...

2- Hevalê we (Pêxember) ji riya rast derneketiye û bi batilî bawer nekiriye...

3- Ew ji cem xwe, ji dilxwaziya xwe napeyive.

4- Ew (peyva wî) her wehya ji cem Xwedê ye.

5- Firîşteyekî hêzedijwar (Cibraîl) ew fêr kiriye.

6- Ew (firîşte di aqil û şekil û xulqiyeta xwe de) bêkêmasî ye. Vêca ew (di kirasê melayîketiyê de) rawestiya.

7- Ew (firîşte) li asoyê herî bilind bû.

8- Paşî ew nêzî (Pêxember) bû, vêca hin bi hin berjêr bû.

9- Bi qasî du kevanan an jî hê jê kêmtir nêzîkî wî bû.

10- Vêca Cibraîl wehî da bendeyê Xwedê, ewa ku Xwedê lê ferman kirî.

11- Dilê wî, ya ku çavê wî dîtî derew dernexistiye.

12- Ma li ser a ku (şeva Mi'racê) wî dîtî, vêca hûn ê pê re têbikoşin?

13- Sond be, careke din jî (Pêxember) Cibraîl dîtibû.

14- Li cem sidret ul mutehayê.

15- Cennetul Me'wa jî li cem wê ye.

16- (Wî Cibrîl dît, di) wê dema sidret-ul munteha nixumandibû ya ew nixumandî.

17- Çavê wî (rast û çep) meyl nedaye û (ji ya ku dîtî) derbas nebûye.

18- Sond be, wî hin ji nîşanên Xwedayê xwe yên herî mezin dîtine.

٥٢٧ الجزء السابع والعشرون

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ
وَالنَّجْمِ اِذَا هَوٰىۙ ﴿١﴾ مَا ضَلَّ صَاحِبُكُمْ وَمَا غَوٰىۚ ﴿٢﴾ وَمَا يَنْطِقُ
عَنِ الْهَوٰىۜ ﴿٣﴾ اِنْ هُوَ اِلَّا وَحْيٌ يُوحٰىۙ ﴿٤﴾ عَلَّمَهُ شَد۪يدُ الْقُوٰىۙ ﴿٥﴾
ذُو مِرَّةٍۜ فَاسْتَوٰىۙ ﴿٦﴾ وَهُوَ بِالْاُفُقِ الْاَعْلٰىۜ ﴿٧﴾ ثُمَّ دَنَا فَتَدَلّٰىۙ ﴿٨﴾
فَكَانَ قَابَ قَوْسَيْنِ اَوْ اَدْنٰىۚ ﴿٩﴾ فَاَوْحٰٓى اِلٰى عَبْدِه۪ مَٓا اَوْحٰىۜ ﴿١٠﴾
مَا كَذَبَ الْفُؤَادُ مَا رَاٰى ﴿١١﴾ اَفَتُمَارُونَهُ عَلٰى مَا يَرٰى ﴿١٢﴾ وَلَقَدْ
رَاٰهُ نَزْلَةً اُخْرٰىۙ ﴿١٣﴾ عِنْدَ سِدْرَةِ الْمُنْتَهٰى ﴿١٤﴾ عِنْدَهَا جَنَّةُ الْمَأْوٰىۜ ﴿١٥﴾
اِذْ يَغْشَى السِّدْرَةَ مَا يَغْشٰىۙ ﴿١٦﴾ مَا زَاغَ الْبَصَرُ وَمَا طَغٰى ﴿١٧﴾ لَقَدْ
رَاٰى مِنْ اٰيَاتِ رَبِّهِ الْكُبْرٰى ﴿١٨﴾ اَفَرَاَيْتُمُ اللَّاتَ وَالْعُزّٰىۙ ﴿١٩﴾ وَمَنٰوةَ
الثَّالِثَةَ الْاُخْرٰى ﴿٢٠﴾ اَلَكُمُ الذَّكَرُ وَلَهُ الْاُنْثٰى ﴿٢١﴾ تِلْكَ اِذًا قِسْمَةٌ ض۪يزٰى
﴿٢٢﴾ اِنْ هِيَ اِلَّٓا اَسْمَٓاءٌ سَمَّيْتُمُوهَٓا اَنْتُمْ وَاٰبَٓاؤُ۬كُمْ مَٓا اَنْزَلَ اللّٰهُ
بِهَا مِنْ سُلْطَانٍۜ اِنْ يَتَّبِعُونَ اِلَّا الظَّنَّ وَمَا تَهْوَى الْاَنْفُسُۚ وَلَقَدْ
جَٓاءَهُمْ مِنْ رَبِّهِمُ الْهُدٰىۜ ﴿٢٣﴾ اَمْ لِلْاِنْسَانِ مَا تَمَنّٰىۘ ﴿٢٤﴾ فَلِلّٰهِ
الْاٰخِرَةُ وَالْاُو۫لٰىۚ ﴿٢٥﴾ وَكَمْ مِنْ مَلَكٍ فِي السَّمٰوَاتِ لَا تُغْن۪ي
شَفَاعَتُهُمْ شَيْـًٔا اِلَّا مِنْ بَعْدِ اَنْ يَأْذَنَ اللّٰهُ لِمَنْ يَشَٓاءُ وَيَرْضٰى ﴿٢٦﴾

19-Erê, (gelî muşrikan) ma we Lat û Uzza dîtin (ew ên ku hûn îbadeta wan dikin)?

20- Hem jî yê sisiyê Menat (ka çi qudreta wan heye ku hûn îbadeta wan dikin)!

21- Erê ma kur yên we ne û keç jî yên Xwedê ne?

22- Ev çi parvekirineke bêînsaf e!

23- Ev (pût û senem) ji hin navên ku we û bav û bapîrên we danîne pê ve ne tiştekî din in. Xwedê der barê wan de tu delîlek neşandiye. Bi rastî ew (muşrik) li pey gumanê û dilxweziya xwe dikevin. Sond be, bi rastî jî ji Xwedayê wan, pêxember ji wan re hatiye.

24- Erê çi tiştê însan bivê ma ew ê were cih?

25- Vêca axiret û dinya jî yên Xwedê Teala ne.

26- Li asîmanan gelek melayîket hene ku mehderiya wan feydeya tu tiştî nade; ji bilî wî kesê ku Xwedê jê re bivê û pê razî be.

اِنَّ الَّذٖينَ لَا يُؤْمِنُونَ بِالْاٰخِرَةِ لَيُسَمُّونَ الْمَلٰٓئِكَةَ تَسْمِيَةَ الْاُنْثٰى
﴿٢٧﴾ وَمَا لَهُمْ بِهٖ مِنْ عِلْمٍ اِنْ يَتَّبِعُونَ اِلَّا الظَّنَّ وَاِنَّ الظَّنَّ لَا يُغْنٖى
مِنَ الْحَقِّ شَيْـًٔا ﴿٢٨﴾ فَاَعْرِضْ عَنْ مَنْ تَوَلّٰى عَنْ ذِكْرِنَا وَلَمْ يُرِدْ اِلَّا
الْحَيٰوةَ الدُّنْيَا ﴿٢٩﴾ ذٰلِكَ مَبْلَغُهُمْ مِنَ الْعِلْمِ اِنَّ رَبَّكَ هُوَ اَعْلَمُ بِمَنْ
ضَلَّ عَنْ سَبٖيلِهٖ وَهُوَ اَعْلَمُ بِمَنِ اهْتَدٰى ﴿٣٠﴾ وَلِلّٰهِ مَا فِى السَّمٰوَاتِ
وَمَا فِى الْاَرْضِ لِيَجْزِىَ الَّذٖينَ اَسَٓاؤُا بِمَا عَمِلُوا وَيَجْزِىَ الَّذٖينَ
اَحْسَنُوا بِالْحُسْنٰى ﴿٣١﴾ اَلَّذٖينَ يَجْتَنِبُونَ كَبَٓائِرَ الْاِثْمِ وَالْفَوَاحِشَ
اِلَّا اللَّمَمَ اِنَّ رَبَّكَ وَاسِعُ الْمَغْفِرَةِ هُوَ اَعْلَمُ بِكُمْ اِذْ اَنْشَاَكُمْ
مِنَ الْاَرْضِ وَاِذْ اَنْتُمْ اَجِنَّةٌ فٖى بُطُونِ اُمَّهَاتِكُمْ فَلَا تُزَكُّٓوا اَنْفُسَكُمْ
هُوَ اَعْلَمُ بِمَنِ اتَّقٰى ﴿٣٢﴾ اَفَرَاَيْتَ الَّذٖى تَوَلّٰى ﴿٣٣﴾ وَاَعْطٰى قَلٖيلًا
وَاَكْدٰى ﴿٣٤﴾ اَعِنْدَهُ عِلْمُ الْغَيْبِ فَهُوَ يَرٰى ﴿٣٥﴾ اَمْ لَمْ يُنَبَّاْ بِمَا فٖى
صُحُفِ مُوسٰى ﴿٣٦﴾ وَاِبْرٰهٖيمَ الَّذٖى وَفّٰى ﴿٣٧﴾ اَلَّا تَزِرُ وَازِرَةٌ وِزْرَ
اُخْرٰى ﴿٣٨﴾ وَاَنْ لَيْسَ لِلْاِنْسَانِ اِلَّا مَا سَعٰى ﴿٣٩﴾ وَاَنَّ سَعْيَهُ سَوْفَ
يُرٰى ﴿٤٠﴾ ثُمَّ يُجْزٰيهُ الْجَزَٓاءَ الْاَوْفٰى ﴿٤١﴾ وَاَنَّ اِلٰى رَبِّكَ الْمُنْتَهٰى
﴿٤٢﴾ وَاَنَّهُ هُوَ اَضْحَكَ وَاَبْكٰى ﴿٤٣﴾ وَاَنَّهُ هُوَ اَمَاتَ وَاَحْيَا ﴿٤٤﴾
وَاَنَّهُ

**27**- Bi rastî ew ên ku axiretê înkar dikin, melayîketan keç dibînin (dibêjin: Melayîket keçên Xwedê ne. Haşa!).

**28**- Hal ev e ku bi vê (gotina wan) tu zanîna wan tune ye. Tenê li pey gumanê diçin. Bi rastî zen û guman jî cihê heqiyê nagire.

**29**- Vêca tu jî berê xwe ji wan vegerîne, ew ên ku wan pişta xwe daye Quranê û ji jiyana dinyayê pê ve tiştekî din naxwazin.

**30**- Ha ev domahîka zanîna wan e. Bêguman Xwedayê te, bi yê ku ji riya wî derketiye bêhtir dizane û bi yê ku di riya rast de ye jî bêhtir dizane.

**31**- Çi tiştên di erd û asîmanan de hene her yên Xwedê ne. Da ku Xwedê yên neqencî kirin wan ceza bike û yên ku qencî jî kirin bi ya herî rind xelat bike.

**32**- Ew (qencîkar) ên ku -ji gunehên biçûçik pê ve- xwe ji gunehên mezin û fehşîtiyan vedidin. Bi rastî lêborîna Xwedayê te berfireh e. Ew, dema hûn ji axê afirandin û dema hûn di zikên dayîkên xwe de bûn jî, bi we çêtir dizane. Vêca hûn xwe paqij nebînin (nebêjin em qenc û teqwedar in), bi rastî Xwedê çêtir bi teqwadaran dizane.

**33**- Ma te ew ê ku berê xwe (ji îmanê) guhartiye dît?

**34**- Hindik daye û qelsî kiriye.

**35**- Gelo ma zanîna xeybê li cem wî ye, vêca ew xeybê dibîne û dizane?

**36**- Yan jî ma ew ji ya ku di suhûfên Mûsa de hatiye nivîsîn xeberdar nebûye?

**37**- Hem (ji ya ku di suhûfên) Îbrahîmê wefadar de (hatiye nivîsîn) jî?

**38**- Bi rastî tu gunehkar barê gunehê tu kesê din hilnagire (û tu kes cezayê gunehê tu kesî nakêşe)

**39**- Ji însên re, ji kar û kiryarê wî pê ve tiştekî din jê re nîn e.

**40**- Bi rastî jî ew ê kar û kiryarê xwe paşê (roja qiyametê) bibîne.

**41**- Piştre Xweda dê bedêla kar û kiryarê wî bêkêmasî bide wî.

**42**- Bêguman vegera dawîn bi bal Xwedayê te ve ye.

**43**- Bêguman Ew e yê ku ken û girîn dane.

**44**- Bêguman Ew e yê ku mirin û jiyan dane.

**45**- Bêguman Ew e yê ku her du cot; nêr û mê afirandine.

**46**- Ji dilopek av gava ku di malzorakê de tê verêhtin.

**47**- Bêguman saxkirina piştî mirinê jî her li ser wî ye.

**48**- Bêguman Ew e yê ku zengînî û qinyatê dide.

**49**- Bêguman Ew e Xwedayê stêra Şi'rayê (Gelawêjê)

**50**- Bêguman Ew e yê ku Adê yekem biriye helakê.

**51**- Semûd jî (biriye helakê), vêca kes ji wan nehiştiye.

**52**- Beriya wan gelê Nûh jî (biriye helakê). Bi rastî ew zalimtir û hartir bûn.

**53**-Welat û bajarên gelê Lût jî serûbin kirine.

**54**- Vêca Xwedê bi serê wan de anî ya ku anî.

**55**- Vêca (hey însan) ma tu di kîjan Ni'metên Xwedayê xwe de dikevî gumanê?!

**56**- Ha ev pêxember jî ji wan hişyarkerên pêşîn hişyarkerek e.

**57**- Qiyamet nêz bûye.

**58**- Ji Xwedê pê ve tu kes nîn e ku (cansojiyên) qiyametê (ji ser xelkê) rake.

**59**- Êdî ma hûn li vê Quranê dimînin şaş?

**60**- Hûn dikenin û nagirîn!

**61**- Haya we (ji fikirîna Quranê) nîn e.

**62**- De heydê ji Ellah Teala re herin sicûdê û îbadeta wî bikin!

## SUREYÊ EL-QEMER

Sûreyê Qemer 55 (pêncî û penc) ayet e û li Mekkeyê daketiye. Sûre, navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de bêjeya Qemer derbas bûye û bi mehneya heyvê ye. Hem jî ji ber ku mucîzeya duşeqbûna heyvê di vî sûreyî de hatiye ragihandin jê re Qemer hatiye gotin.



وَاَنَّهُ خَلَقَ الزَّوْجَيْنِ الذَّكَرَ وَالْاُنْثٰى ﴿٤٥﴾ مِنْ نُطْفَةٍ اِذَا تُمْنٰى ﴿٤٦﴾
وَاَنَّ عَلَيْهِ النَّشْاَةَ الْاُخْرٰى ﴿٤٧﴾ وَاَنَّهُ هُوَ اَغْنٰى وَاَقْنٰى ﴿٤٨﴾ وَاَنَّهُ
هُوَ رَبُّ الشِّعْرٰى ﴿٤٩﴾ وَاَنَّهُ اَهْلَكَ عَادًا الْاُولٰى ﴿٥٠﴾ وَثَمُودَا فَمَا اَبْقٰى ﴿٥١﴾
وَقَوْمَ نُوحٍ مِنْ قَبْلُ اِنَّهُمْ كَانُوا هُمْ اَظْلَمَ وَاَطْغٰى ﴿٥٢﴾ وَالْمُؤْتَفِكَةَ اَهْوٰى
﴿٥٣﴾ فَغَشّٰيهَا مَا غَشّٰى ﴿٥٤﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكَ تَتَمَارٰى ﴿٥٥﴾ هٰذَا نَذِيرٌ
مِنَ النُّذُرِ الْاُولٰى ﴿٥٦﴾ اَزِفَتِ الْاٰزِفَةُ ﴿٥٧﴾ لَيْسَ لَهَا مِنْ دُونِ اللّٰهِ
كَاشِفَةٌ ﴿٥٨﴾ اَفَمِنْ هٰذَا الْحَدِيثِ تَعْجَبُونَ ﴿٥٩﴾ وَتَضْحَكُونَ
سجدة وَلَا تَبْكُونَ ﴿٦٠﴾ وَاَنْتُمْ سَامِدُونَ ﴿٦١﴾ فَاسْجُدُوا لِلّٰهِ وَاعْبُدُوا ﴿٦٢﴾

سُورَةُ الْقَمَرِ مَكِّيَّةٌ وَهِيَ
خَمْسٌ وَخَمْسُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّح۪يمِ

اِقْتَرَبَتِ السَّاعَةُ وَانْشَقَّ الْقَمَرُ ﴿١﴾ وَاِنْ يَرَوْا اٰيَةً يُعْرِضُوا وَيَقُولُوا
سِحْرٌ مُسْتَمِرٌّ ﴿٢﴾ وَكَذَّبُوا وَاتَّبَعُوا اَهْوَٓاءَهُمْ وَكُلُّ اَمْرٍ مُسْتَقِرٌّ ﴿٣﴾
وَلَقَدْ جَٓاءَهُمْ مِنَ الْاَنْبَٓاءِ مَا ف۪يهِ مُزْدَجَرٌ ﴿٤﴾ حِكْمَةٌ بَالِغَةٌ فَمَا
تُغْنِ النُّذُرُ ﴿٥﴾ فَتَوَلَّ عَنْهُمْ يَوْمَ يَدْعُ الدَّاعِ اِلٰى شَيْءٍ نُكُرٍ ﴿٦﴾

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

**1**- Qiyamet nêz bû û heyv bû du şeq.

**2**- Eger ku ew mucîzeyekê bibînin di cih de berê xwe jê vedigerînin û dibêjin: Ev sêreke kêvnare ye, seraqetî ye.

**3**- Muşrikan bi pêxember bawerî neanî û (wan di batilî de) da pey hewesên xwe. Her karek (ku peymana Xwedê pê hebe) di zemanê xwe de misoger dibe.

**4**- Sond be, bi rastî (di Quranê de) gelek agahî ji bo wan hatine ku wan ji kufrê vegerîne.

**5**- Hîkmeteke temam (û mikûm) ji bo wan hat, vêca ew tu feydeyê nade muşrikan.

**6**- Vêca wan di rewşa wan de bihêle heta ku roja banghildêr (Îsrafîl) wan gazî bal tiştekî bitirs, nedîtî û nebînayî bike.

خُشَّعًا اَبْصَارُهُمْ يَخْرُجُونَ مِنَ الْاَجْدَاثِ كَاَنَّهُمْ جَرَادٌ مُنْتَشِرٌ
﴿٧﴾ مُهْطِعِينَ اِلَى الدَّاعِ يَقُولُ الْكَافِرُونَ هٰذَا يَوْمٌ عَسِرٌ ﴿٨﴾ كَذَّبَتْ
قَبْلَهُمْ قَوْمُ نُوحٍ فَكَذَّبُوا عَبْدَنَا وَقَالُوا مَجْنُونٌ وَازْدُجِرَ ﴿٩﴾ فَدَعَا
رَبَّهُ اَنِّي مَغْلُوبٌ فَانْتَصِرْ ﴿١٠﴾ فَفَتَحْنَا اَبْوَابَ السَّمَاءِ بِمَاءٍ مُنْهَمِرٍ
﴿١١﴾ وَفَجَّرْنَا الْاَرْضَ عُيُونًا فَالْتَقَى الْمَاءُ عَلٰى اَمْرٍ قَدْ قُدِرَ ﴿١٢﴾
وَحَمَلْنَاهُ عَلٰى ذَاتِ اَلْوَاحٍ وَدُسُرٍ ﴿١٣﴾ تَجْرِي بِاَعْيُنِنَا جَزَاءً لِمَنْ
كَانَ كُفِرَ ﴿١٤﴾ وَلَقَدْ تَرَكْنَاهَا اٰيَةً فَهَلْ مِنْ مُدَّكِرٍ ﴿١٥﴾ فَكَيْفَ كَانَ
عَذَابِي وَنُذُرِ ﴿١٦﴾ وَلَقَدْ يَسَّرْنَا الْقُرْاٰنَ لِلذِّكْرِ فَهَلْ مِنْ مُدَّكِرٍ ﴿١٧﴾
كَذَّبَتْ عَادٌ فَكَيْفَ كَانَ عَذَابِي وَنُذُرِ ﴿١٨﴾ اِنَّا اَرْسَلْنَا عَلَيْهِمْ رِيحًا
صَرْصَرًا فِي يَوْمِ نَحْسٍ مُسْتَمِرٍّ ﴿١٩﴾ تَنْزِعُ النَّاسَ كَاَنَّهُمْ اَعْجَازُ
نَخْلٍ مُنْقَعِرٍ ﴿٢٠﴾ فَكَيْفَ كَانَ عَذَابِي وَنُذُرِ ﴿٢١﴾ وَلَقَدْ يَسَّرْنَا الْقُرْاٰنَ
لِلذِّكْرِ فَهَلْ مِنْ مُدَّكِرٍ ﴿٢٢﴾ كَذَّبَتْ ثَمُودُ بِالنُّذُرِ ﴿٢٣﴾ فَقَالُوا اَبَشَرًا مِنَّا
وَاحِدًا نَتَّبِعُهُ اِنَّا اِذًا لَفِي ضَلَالٍ وَسُعُرٍ ﴿٢٤﴾ ءَاُلْقِيَ الذِّكْرُ عَلَيْهِ
مِنْ بَيْنِنَا بَلْ هُوَ كَذَّابٌ اَشِرٌ ﴿٢٥﴾ سَيَعْلَمُونَ غَدًا مَنِ الْكَذَّابُ
الْاَشِرُ ﴿٢٦﴾ اِنَّا مُرْسِلُوا النَّاقَةِ فِتْنَةً لَهُمْ فَارْتَقِبْهُمْ وَاصْطَبِرْ ﴿٢٧﴾

وَنَبِّئْهُمْ

7- Çavtirsandî û çavşikestî ji tirban derdikevin, tê bibêjî ew kuliyên belavbûyî ne.

8- Bi bal banghildêr ve dibezin (da ku li qada qiyametê amade bibin).Yên kafir dibêjin: Ev rojeke dijwar û zehmet e!

9- Beriya van (muşrikan) gelê Nûh jî bawerî neanî û wan bendeyê me Nûh derewîn derxist, gotin: Nûh dîn bûye û (ji teblîxa dîn) ew paş ve birin.

10- Vêca Nûh gazî Xwedayê xwe kir: Bi rastî ez têkçûm, bêçare me, arîkariya min bike!

11- Me jî di cih de deriyên asmên bi baraneke pir li ser wan vekirin.

12- Me ji erdê jî kanî herikandin, vêca bi awayekî ku Xwedê teqdîr kirî ev her du av (ya erd û asmên) gihîştin hev.

13- Me Nûh (û hevalên wî) jî siwarî keştiyekê kirin ku ji depan hatibû çêkirin û bi bismaran hatibû sazkirin û şidandin.

14- Wê (keştî) bi hifz û çavdêriya me avjenî dikir. Ha ev e, cezayê yên ku kafir bûne.

15- Sond be, me ew keştî wisa hişt da ku bibe nîşan û îbret. Edî ma ka îbretgir û şîretwergir?

16- Vêca ka ezabê min û hişyarkirina min çawa bû?!

17- Sond be, Me Quran ji bo şîretgirtinê hêsan kiriye. Vêca ma ew ê ku bifikire û jê şîret bigire?

18- Gelê Ad jî (bi pêxemberê xwe Hûd) bawerî neanî, vêca ka ezabê min û hişyarkirina min çawa bû?!

19- Me bayekî zêde sar û bi vîzevîz, di rojeke bêqudoş de, bi berdewamî bi ser wan de şand.

20- wî bayî mirov digirtin, diavêtin her wekî ku ew qurmê dara xurmê bin ku ji rayên xwe hatine hilkirin û avêtin.

21- Vêca ka ezabê min û hişyarkirina min çawa bû?!

22- Sond be, Me Quran ji bo şîretgirtinê hêsan kiriye. Vêca ma ew ê ku bifikire û jê şîret bigire?

23-Gelê Semûd jî bi peyxemberan bawerî neanî.

24- Gotin: Ma em ê bidin pey mirovekî ji xwe, wê çaxê em di nav rêşaşî û dînîtiyê de ne.

25- Erê ma ji nav me hemûyan wehî jê re hat? Na, belkî ew derewînekî bitir e.

26- Ew ê sibehê bizanin ka kî ye derewînê bitir?

27- (Xwedê ji Salih Pêxember re got:) Bi rastî ji bo ceribandina wan em ê ji wan re bişînin. Vêca tu li bendê be (ka ew dê çi bikin) û (li hemberî eziyeta wan) sebirê bikêşe.

وَنَبِّئْهُمْ اَنَّ الْمَٓاءَ قِسْمَةٌ بَيْنَهُمْۚ كُلُّ شِرْبٍ مُحْتَضَرٌ ﴿٢٨﴾ فَنَادَوْا
صَاحِبَهُمْ فَتَعَاطٰى فَعَقَرَ ﴿٢٩﴾ فَكَيْفَ كَانَ عَذَابٖى وَنُذُرِ ﴿٣٠﴾ اِنَّٓا اَرْسَلْنَا
عَلَيْهِمْ صَيْحَةً وَاحِدَةً فَكَانُوا كَهَشٖيمِ الْمُحْتَظِرِ ﴿٣١﴾ وَلَقَدْ يَسَّرْنَا
الْقُرْاٰنَ لِلذِّكْرِ فَهَلْ مِنْ مُدَّكِرٍ ﴿٣٢﴾ كَذَّبَتْ قَوْمُ لُوطٍ بِالنُّذُرِ ﴿٣٣﴾
اِنَّٓا اَرْسَلْنَا عَلَيْهِمْ حَاصِبًا اِلَّٓا اٰلَ لُوطٍۜ نَجَّيْنَاهُمْ بِسَحَرٍۙ ﴿٣٤﴾ نِعْمَةً مِنْ
عِنْدِنَاۜ كَذٰلِكَ نَجْزٖى مَنْ شَكَرَ ﴿٣٥﴾ وَلَقَدْ اَنْذَرَهُمْ بَطْشَتَنَا فَتَمَارَوْا
بِالنُّذُرِ ﴿٣٦﴾ وَلَقَدْ رَاوَدُوهُ عَنْ ضَيْفِهٖ فَطَمَسْنَٓا اَعْيُنَهُمْ فَذُوقُوا عَذَابٖى
وَنُذُرِ ﴿٣٧﴾ وَلَقَدْ صَبَّحَهُمْ بُكْرَةً عَذَابٌ مُسْتَقِرٌّۚ ﴿٣٨﴾ فَذُوقُوا عَذَابٖى
وَنُذُرِ ﴿٣٩﴾ وَلَقَدْ يَسَّرْنَا الْقُرْاٰنَ لِلذِّكْرِ فَهَلْ مِنْ مُدَّكِرٍ ﴿٤٠﴾ وَلَقَدْ جَٓاءَ
اٰلَ فِرْعَوْنَ النُّذُرُۚ ﴿٤١﴾ كَذَّبُوا بِاٰيَاتِنَا كُلِّهَا فَاَخَذْنَاهُمْ اَخْذَ
عَزٖيزٍ مُقْتَدِرٍ ﴿٤٢﴾ اَكُفَّارُكُمْ خَيْرٌ مِنْ اُو۬لٰٓئِكُمْ اَمْ لَكُمْ بَرَٓاءَةٌ
فِى الزُّبُرِۚ ﴿٤٣﴾ اَمْ يَقُولُونَ نَحْنُ جَمٖيعٌ مُنْتَصِرٌ ﴿٤٤﴾ سَيُهْزَمُ الْجَمْعُ
وَيُوَلُّونَ الدُّبُرَ ﴿٤٥﴾ بَلِ السَّاعَةُ مَوْعِدُهُمْ وَالسَّاعَةُ اَدْهٰى وَاَمَرُّ ﴿٤٦﴾
اِنَّ الْمُجْرِمٖينَ فٖى ضَلَالٍ وَسُعُرٍ ﴿٤٧﴾ يَوْمَ يُسْحَبُونَ فِى النَّارِ عَلٰى
وُجُوهِهِمْۜ ذُوقُوا مَسَّ سَقَرَ ﴿٤٨﴾ اِنَّا كُلَّ شَيْءٍ خَلَقْنَاهُ بِقَدَرٍ ﴿٤٩﴾

**28**- Ji wan re bibêje ku av di navbera wan (û deveyê) de hatiye parvekirin, her yek (ji we û deveyê) bila roja vexwarinê hazir be.

**29**- (Êla Semûd) Gazî hevalekî xwe kirin, wî jî bi ya wan kir; rahişt şûr û (pê deve) kuşt.

**30**- Vêca ka ezabê min û hişyarkirina min çawa bû?!

**31**- Me yek qîreke cansoj şand ser wan. Di cih de ew bûn wekî pûş û pelaxên ku di bin lingên heywanan de hûrbûyî.

**32**- Sond be, Me Quran ji bo şîretgirtinê hêsan kiriye. Ma kesekî ku bifikire û jê şîret bigire tune ye?

**33**- Gelê Lût jî pêxember derewîn derxistin.

**34**- Bi rastî Me bahozeke kevirbarîn şande ser wan, ji bilî malbata Lût, me berdestî sibehê ew xelas kirin.

**35**- (Rehakirina wan) qenciyek bû ji cem me, her wiha em şukirdaran xelat dikin.

**36**- Sond be, Lût ew bi ezabê me tirsandin û hişyar kirin, lê belê wan bawerî bi hişyariyên me neanî.

**37**- Sond be, wan ji Lût xwestibû ku ji nava wan û mêvanên xwe derkeve (da ku xerabiyê bi wan bikin). Di cih de me çavên wan kor kirin (û me ji wan re got:) Vêca de ezab û gefên min tehm bikin!

**38**- Sond be ku di danê sibehê de ezabekî berdewamî bi ser wan de girt (û ew hew berdan).

**39**- Vêca de ezab û gefên min tehm bikin!

**40**- Sond be, Me Quran ji bo şîretgirtinê hêsan kiriye. Ma kesekî ku bifikire û jê şîret bigire tune ye?

**41**- Sond be ku hişyariyên cur bi cur ji Firewn û gelê wî re jî hatin.

**42**- Lê belê wan bi hemû nîşanên me bawerî neanî. Me jî ew bi girtina Xwedayê serdestê xwedîhêz girtin û bernedan.

**43**- Êdî ma kafirên we ji kafirên wan (umetên ku çûne helakê) çêtir in? Yan jî di kitêban de ji bo we piştrastiyek heye?

**44**- Yan jî ew dibêjin: Em civateke hevkar in?

**45**- Ew civat dê têk biçe û tev dê bi şûn xwe ve birevin.

**46**- Bi rastî civana wan qiyamet e. Ew, (ji her ezabî) dijwartir û tehltir e!

**47**- Bêguman gunehkar (li dinyayê) di nav rêşaşiyê û (li axiretê jî) di agirê bipêt de ne.

**48**- Wê rojê, gava li ser rûyê xwe di êgir de tên xijiqandin, ji wan re tê gotin: Hingavtina (jana) dojehê biçêjin!

**49**- Bêguman me her tişt bi pîvan afirandiye.

وَمَٓا اَمْرُنَٓا اِلَّا وَاحِدَةٌ كَلَمْحٍ بِالْبَصَرِ ﴿٥٠﴾ وَلَقَدْ اَهْلَكْنَٓا
اَشْيَاعَكُمْ فَهَلْ مِنْ مُدَّكِرٍ ﴿٥١﴾ وَكُلُّ شَيْءٍ فَعَلُوهُ
فِي الزُّبُرِ ﴿٥٢﴾ وَكُلُّ صَغِيرٍ وَكَبِيرٍ مُسْتَطَرٌ ﴿٥٣﴾ اِنَّ الْمُتَّقِينَ
فِي جَنَّاتٍ وَنَهَرٍ ﴿٥٤﴾ فِي مَقْعَدِ صِدْقٍ عِنْدَ مَلِيكٍ مُقْتَدِرٍ ﴿٥٥﴾

سُورَةُ الرَّحْمٰنِ مَكِّيَّةٌ
وَهِيَ ثَمَانٍ وَسَبْعُونَ اٰيَةً

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

اَلرَّحْمٰنُ ﴿١﴾ عَلَّمَ الْقُرْاٰنَ ﴿٢﴾ خَلَقَ الْاِنْسَانَ ﴿٣﴾ عَلَّمَهُ الْبَيَانَ
﴿٤﴾ اَلشَّمْسُ وَالْقَمَرُ بِحُسْبَانٍ ﴿٥﴾ وَالنَّجْمُ وَالشَّجَرُ يَسْجُدَانِ
﴿٦﴾ وَالسَّمَٓاءَ رَفَعَهَا وَوَضَعَ الْمِيزَانَ ﴿٧﴾ اَلَّا تَطْغَوْا فِي الْمِيزَانِ ﴿٨﴾
وَاَقِيمُوا الْوَزْنَ بِالْقِسْطِ وَلَا تُخْسِرُوا الْمِيزَانَ ﴿٩﴾ وَالْاَرْضَ
وَضَعَهَا لِلْاَنَامِ ﴿١٠﴾ فِيهَا فَاكِهَةٌ وَالنَّخْلُ ذَاتُ الْاَكْمَامِ ﴿١١﴾
وَالْحَبُّ ذُو الْعَصْفِ وَالرَّيْحَانُ ﴿١٢﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ
﴿١٣﴾ خَلَقَ الْاِنْسَانَ مِنْ صَلْصَالٍ كَالْفَخَّارِ ﴿١٤﴾ وَخَلَقَ الْجَٓانَّ
مِنْ مَارِجٍ مِنْ نَارٍ ﴿١٥﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿١٦﴾

رَبُّ

**50**- Fermana me (ji bo çêkirina her tiştekî) carek e; wekî miçkirin û vekirina çav e. (Gava em tiştekî bivên jê re dibêjin, bibe! Ew jî di cih de dibe).

**51**- Sond be ku me (di kufr û înkarê de) milletên wekî we ji navê birine. Ma kesekî ku bifikire û jê şîret bigire tune ye?

**52**- Her tiştê ku îbadan kirine di deftera (emelê) wan de ye.

**53**- Çi biçûk û çi mezin her tişt (a ku îbadan kirî) rêzerêz hatiye nivîsandin.

**54**- Bêguman ên mutteqî di nava bostan û çeman de ne.

**55**- Li dîwaneke heq, li cem padîşahekî xwedî qudret û destbilind in.

## SÛREYÊ ER-REHMAN

Sûreyê Rehman 78 (heftê û heşt) ayet e. Li Mekkê daketiye. Sûre, navê xwe ji ayeta pêşîn Er-Rehman girtiye. Ew jî navekî Ellah Teala ye û bi mehneya Mihrîvan e. Yanî Ellah Teala yê ku li dinyayê rehmê li her tiştî dike û rizqê wan dide û mexlûq jê hez dikin. Di vî sûreyê pîroz de Ni'metên Ellah Teala têne jimartin. Gava ew Ni'met têne jimartin jî ev ayeta "Vêca (gelî îns û cinan!) hûn bi kîjan Ni'metên Xwedayê xwe bawerî nayînin?" tê dubarekirin.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

**1**- Ew Xwedayê ku rehman e...

**2**- Quran (bi pêxember) daye fêrkirin...

**3**- Însan afirandiye...

**4**- Ew fêrî axaftinê kiriye.

**5**- Roj û heyv li gorî hesabekî tevdigerin.

**6**- Giya û dar (ji Xwedê re) diçin sicûdê.

**7**- Asîman bilind kiriye û şehîn (û pergala edaletê) daniye.

**8**- Zinhar di kêşanê (û mêzînê) de neheqiyê nekin.

**9**- Kêşanê bi edaletî bikin û di şehînê (mêzînê) de kêmasiyê mekin.

**10**- Erd ji bo hemû mexlûqan daniye û raxistiye.

**11**- Her texlîtê fêkî û darxurmeyên xwedanxonçe tê de ne...

**12**- Libên xwedan qaşil (dexl û dan) û rihan (giyayên bibêhn) tê de ne.

**13**- Vêca (gelî îns û cinan) ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

**14**- Xwedê însan ji heriyeke kelijandî afirandiye, mîna firaqên ji heriyê.

**15**- Cin jî ji guriya êgir a bêdû afirandine.

**16**- Vêca (gelî îns û cinan) ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

رَبُّ الْمَشْرِقَيْنِ وَرَبُّ الْمَغْرِبَيْنِ ﴿١٧﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ
﴿١٨﴾ مَرَجَ الْبَحْرَيْنِ يَلْتَقِيَانِ ﴿١٩﴾ بَيْنَهُمَا بَرْزَخٌ لَا يَبْغِيَانِ ﴿٢٠﴾
فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٢١﴾ يَخْرُجُ مِنْهُمَا اللُّؤْلُؤُ وَالْمَرْجَانُ
﴿٢٢﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٢٣﴾ وَلَهُ الْجَوَارِ الْمُنْشَاٰتُ فِي الْبَحْرِ
كَالْاَعْلَامِ ﴿٢٤﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٢٥﴾ كُلُّ مَنْ عَلَيْهَا فَانٍ ﴿٢٦﴾
وَيَبْقٰى وَجْهُ رَبِّكَ ذُو الْجَلَالِ وَالْاِكْرَامِ ﴿٢٧﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا
تُكَذِّبَانِ ﴿٢٨﴾ يَسْـَٔلُهُ مَنْ فِي السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ كُلَّ يَوْمٍ هُوَ
فِي شَاْنٍ ﴿٢٩﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٣٠﴾ سَنَفْرُغُ لَكُمْ اَيُّهَ
الثَّقَلَانِ ﴿٣١﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٣٢﴾ يَا مَعْشَرَ الْجِنِّ
وَالْاِنْسِ اِنِ اسْتَطَعْتُمْ اَنْ تَنْفُذُوا مِنْ اَقْطَارِ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ
فَانْفُذُوا لَا تَنْفُذُونَ اِلَّا بِسُلْطَانٍ ﴿٣٣﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ
﴿٣٤﴾ يُرْسَلُ عَلَيْكُمَا شُوَاظٌ مِنْ نَارٍ وَنُحَاسٌ فَلَا تَنْتَصِرَانِ ﴿٣٥﴾
فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٣٦﴾ فَاِذَا انْشَقَّتِ السَّمَٓاءُ فَكَانَتْ
وَرْدَةً كَالدِّهَانِ ﴿٣٧﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٣٨﴾ فَيَوْمَئِذٍ
لَا يُسْـَٔلُ عَنْ ذَنْبِهِ اِنْسٌ وَلَا جَانٌّ ﴿٣٩﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٤٠﴾

17- Ew Xwedayê her du rojhilat û her du rojavayan e.

18- Vêca ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

19- Xwedê her du derya (ya şîrîn û ya şor) herikandin ku ew digihên hev.

20- Di navbera wan de navberek heye, ew têkilî hev nabin.

21- Vêca (gelî îns û cinan) ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

22- Ji her du deryayan sedef û mercan derdikevin.

23- Vêca ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

24- Ew keştiyên wekî çiyayan bilind, ew ên ku (bi îlhameke ji cem Xwedê) mirovan ew çêkirin û di behrê de dikişin, her yên Xwedê ne.

25- Vêca ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

26- Her çi tiştên ku li ser erdê hene tev fanî ne (diçe û namîne).

27- Lê belê Xwedayê te ku xwediyê mezinahî û keremê ye, dê baqî (her û her) bimîne.

28- Vêca (gelî îns û cinan) ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

29- Yên ku li erd û asîmanan hene tev daxwazên xwe jê dikin. Ew, her gav di karekî ji hev cuda de ye.

30- Vêca (gelî îns û cinan) ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

31- Gelî îns û cinan! Em dê ji (hesabê) we re jî vala bibin.

32- Vêca (gelî îns û cinan) ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

33- Gelî civata cin û însanan! Eger hûn dikarin ji aliyên erd û asîmanan (ji binê desthilatiya me) derkevin de derkevin. Lê hûn bêyî hêzekê nikarin derkevin (ew hêz jî ji bo we ne mimkun e).

34- Vêca ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

35- (Roja qiyametê) Bi ser we de guriya agirê bêdû û risasa helandî dê were şandin û (hingê) hûn nikarin arîkariya hev jî bikin.

36- Vêca (gelî îns û cinan) ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

37- Gava asîman biqelişe û bibe wekî soreguleke mîna zeyta kelî (ew roj, çiqas dijwar e!).

38- Vêca (gelî îns û cinan) ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

39- Ha wê rojê ji tu însanî û ji tu cinekî gunehê wî jê nayê pirsîn. (Lewra wê rojê ji qenc û neqencan re hin elamet hene ku pê têne naskirin).

40- Vêca (gelî îns û cinan) ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

يُعْرَفُ الْمُجْرِمُونَ بِسِيمٰيهُمْ فَيُؤْخَذُ بِالنَّوَاصِي وَالْاَقْدَامِۚ ﴿٤١﴾ فَبِاَيِّ
اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٤٢﴾ هٰذِهٖ جَهَنَّمُ الَّت۪ي يُكَذِّبُ بِهَا الْمُجْرِمُونَۢ
﴿٤٣﴾ يَطُوفُونَ بَيْنَهَا وَبَيْنَ حَم۪يمٍ اٰنٍۚ ﴿٤٤﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ
﴿٤٥﴾ وَلِمَنْ خَافَ مَقَامَ رَبِّه۪ جَنَّتَانِۚ ﴿٤٦﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِۙ
﴿٤٧﴾ ذَوَاتَٓا اَفْنَانٍۚ ﴿٤٨﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٤٩﴾ ف۪يهِمَا عَيْنَانِ
تَجْرِيَانِۚ ﴿٥٠﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٥١﴾ ف۪يهِمَا مِنْ كُلِّ
فَاكِهَةٍ زَوْجَانِۚ ﴿٥٢﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٥٣﴾ مُتَّكِـ۪ٔينَ
عَلٰى فُرُشٍ بَطَٓائِنُهَا مِنْ اِسْتَبْرَقٍۜ وَجَنَا الْجَنَّتَيْنِ دَانٍۚ ﴿٥٤﴾ فَبِاَيِّ
اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ ﴿٥٥﴾ ف۪يهِنَّ قَاصِرَاتُ الطَّرْفِۙ لَمْ يَطْمِثْهُنَّ
اِنْسٌ قَبْلَهُمْ وَلَا جَٓانٌّۚ ﴿٥٦﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِۚ ﴿٥٧﴾
كَاَنَّهُنَّ الْيَاقُوتُ وَالْمَرْجَانُۚ ﴿٥٨﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِ
﴿٥٩﴾ هَلْ جَزَٓاءُ الْاِحْسَانِ اِلَّا الْاِحْسَانُۚ ﴿٦٠﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا
تُكَذِّبَانِ ﴿٦١﴾ وَمِنْ دُونِهِمَا جَنَّتَانِۚ ﴿٦٢﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا
تُكَذِّبَانِۙ ﴿٦٣﴾ مُدْهَٓامَّتَانِۚ ﴿٦٤﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِۚ ﴿٦٥﴾
ف۪يهِمَا عَيْنَانِ نَضَّاخَتَانِۚ ﴿٦٦﴾ فَبِاَيِّ اٰلَٓاءِ رَبِّكُمَا تُكَذِّبَانِۚ ﴿٦٧﴾

ف۪يهِمَا

**41**- Gunehkar, bi nîşanên xwe têne naskirin, bi perçem û lingên wan têne girtin (û di cehenemê tên werkirin).

**42**- Vêca (gelî îns û cinan) ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

**43**- Ha ev, ew cehenem e ya ku gunehkaran pê bawerî nedianî.

**44**- Gunehkar di navbera dojehê û ava kelî de diçin û tên.

**45**- Vêca (gelî îns û cinan) ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

**46**- Ji bo kesê ku ji rawestana li ber destên Rebê xwe ditirse, du cenet hene.

**47**- Vêca (gelî îns û cinan) ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

**48**- Her du cenet jî xweydarên bi çiql û fêkî ne.

**49**-Vêca ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

**50**- Di her du cenetan de du kanî hene ku diherikin.

**51**- Vêca (gelî îns û cinan) ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

**52**- Di her du cenetan de jî, ji her mêweyî du texlît hene.

**53**- Vêca (gelî îns û cinan) ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

**54**- Xelkê cenetê li ser doşekan paldayî ne ku betanê wan ji hevrîşimê stûr e. Mêweyê her du cenetan jî (ji wan re) nêzîk in.

**55**- Vêca ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

**56**- Di cenetan de dilberên wisa hene ku çavê wan tenê li mêrên wan e û beriya mêrên wan, ne însekî ne jî cinekî dest nedaye wan.

**57**- Vêca ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

**58**- Ew dîlber her wekî yaqût û mercan in.

**59**- Vêca ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

**60**- Ma xelata başiyê ji bilî başiyê dê çi be?

**61**- Vêca ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

**62**- Ji van her du cenetan pê ve du cenetên din jî hene.

**63**- Vêca (gelî îns û cinan) ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

**64**- Ev her du cenet kesketarî ne.

**65**- Vêca ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

**66**- Di her du cenetan de jî du kanî hene ku her û her diherikin (û naçikin).

**67**- Vêca ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?



**68**- Di her du cenetan de jî mêwe û xurme û hinar hene.

**69**- Vêca (gelî îns û cinan) ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

**70**- Di cenetan de dîlberên exlaqxweş û rûspehî hene.

**71**- Vêca (gelî îns û cinan) ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

**72**- Horiyên di konan de nixumandî ne, çavê wan tenê li mêrên wan e.

**73**- Vêca (gelî îns û cinan) ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

**74**- Beriya mêrên wan, ne însekî ne jî cinekî dest nedaye wan.

**75**- Vêca (gelî îns û cinan) ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

**76**- Xelkê bihiştê li ser balgehên kesk û mexfûrên xweşik paldayî ne.

**77**- Vêca (gelî îns û cinan) ma hûn bi kîjan qenciya Xwedayê xwe bawerî nayînin?

**78**- Pak û pîroz e navê Xwedayê te, ew xwedanê mezinahî û keremê ye.

## SÛREYÊ EL-WAQÎ’E

Sûreyê Waqî’e 96 (not û şeş) ayet e. Li Mekkeyê daketiye û navê xwe ji ayeta pêşîn girtiye ku tê de bêjeya waqî’e derbas bûye û bi mehneya rûdan û qewimîn e. Mebest jê rûdana cansoj, dehşeta qiyametê ye.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

**1**- Gava ku qiyamet rabû...

**2**- Tu kesê ku rabûna wê derewîn derxe tune ye, (lewra wê demê her kes îman tîne)

**3**- Ew hin kesan nizm dike û hinekan jî bilind dike.

**4**- Gava ku erd bi dijwarî hejiya...

**5**- Çiya jî hûr û hêra bibin...

**6**- Vêca ew bibin toz û dûmana berbayî.

**7**- Hûn jî bûne sê cure...

**8**- Xelkê rexê rastê, ma (tu dizanî ku) xelkê rexê rastê kî ne!

**9**- Xelkê rexê çepê, ma (tu dizanî ka) xelkê rexê çepê kî ne!

**10**- Ew ên ku (ji bo qenciyê) li pêş bûne (li axiretê jî, ji bo padaşê dîsa) ew li pêşiyê ne.

**11**- Ha ew, ên ku bi bal Xwedê ve hatine nêzîkkirin.

**12**- (Ew), li bihişta ne’îmê ne.

**13**- Pirên wan ji umetên pêşî ne.

**14**- Hindek jî ji paşiyan in.

**15**- Li ser textên zîv û zêrîn rûniştî ne.

**16**- Li ser wan textan li pêşberî hev paldayî ne.

يَطُوفُ عَلَيْهِمْ وِلْدَانٌ مُخَلَّدُونَ ﴿١٧﴾ بِأَكْوَابٍ وَأَبَارِيقَ وَكَأْسٍ
مِنْ مَعِينٍ ﴿١٨﴾ لَا يُصَدَّعُونَ عَنْهَا وَلَا يُنْزِفُونَ ﴿١٩﴾ وَفَاكِهَةٍ مِمَّا يَتَخَيَّرُونَ
﴿٢٠﴾ وَلَحْمِ طَيْرٍ مِمَّا يَشْتَهُونَ ﴿٢١﴾ وَحُورٌ عِينٌ ﴿٢٢﴾ كَأَمْثَالِ اللُّؤْلُؤِ الْمَكْنُونِ
﴿٢٣﴾ جَزَاءً بِمَا كَانُوا يَعْمَلُونَ ﴿٢٤﴾ لَا يَسْمَعُونَ فِيهَا لَغْوًا وَلَا تَأْثِيمًا
﴿٢٥﴾ إِلَّا قِيلًا سَلَامًا سَلَامًا ﴿٢٦﴾ وَأَصْحَابُ الْيَمِينِ مَا أَصْحَابُ الْيَمِينِ
﴿٢٧﴾ فِي سِدْرٍ مَخْضُودٍ ﴿٢٨﴾ وَطَلْحٍ مَنْضُودٍ ﴿٢٩﴾ وَظِلٍّ مَمْدُودٍ ﴿٣٠﴾ وَمَاءٍ
مَسْكُوبٍ ﴿٣١﴾ وَفَاكِهَةٍ كَثِيرَةٍ ﴿٣٢﴾ لَا مَقْطُوعَةٍ وَلَا مَمْنُوعَةٍ ﴿٣٣﴾ وَفُرُشٍ
مَرْفُوعَةٍ ﴿٣٤﴾ إِنَّا أَنْشَأْنَاهُنَّ إِنْشَاءً ﴿٣٥﴾ فَجَعَلْنَاهُنَّ أَبْكَارًا ﴿٣٦﴾ عُرُبًا
أَتْرَابًا ﴿٣٧﴾ لِأَصْحَابِ الْيَمِينِ ﴿٣٨﴾ ثُلَّةٌ مِنَ الْأَوَّلِينَ ﴿٣٩﴾ وَثُلَّةٌ
مِنَ الْآخِرِينَ ﴿٤٠﴾ وَأَصْحَابُ الشِّمَالِ مَا أَصْحَابُ الشِّمَالِ ﴿٤١﴾
فِي سَمُومٍ وَحَمِيمٍ ﴿٤٢﴾ وَظِلٍّ مِنْ يَحْمُومٍ ﴿٤٣﴾ لَا بَارِدٍ وَلَا كَرِيمٍ ﴿٤٤﴾
إِنَّهُمْ كَانُوا قَبْلَ ذَٰلِكَ مُتْرَفِينَ ﴿٤٥﴾ وَكَانُوا يُصِرُّونَ عَلَى الْحِنْثِ
الْعَظِيمِ ﴿٤٦﴾ وَكَانُوا يَقُولُونَ أَئِذَا مِتْنَا وَكُنَّا تُرَابًا وَعِظَامًا
أَإِنَّا لَمَبْعُوثُونَ ﴿٤٧﴾ أَوَآبَاؤُنَا الْأَوَّلُونَ ﴿٤٨﴾ قُلْ إِنَّ الْأَوَّلِينَ
وَالْآخِرِينَ ﴿٤٩﴾ لَمَجْمُوعُونَ إِلَىٰ مِيقَاتِ يَوْمٍ مَعْلُومٍ ﴿٥٠﴾

ثُمَّ

**17**- Li ser wan, wildan (xortik) ên tim ciwan (ji bo xizmetê) digerin.

**18**- Ji kaniyan cêr û misîn û kasan dadigirin (û li wan digerînin)...

**19**- Ku ji vê meya (lezîz) ne serê wan diêşe ne jî pê serxweş dibin.

**20**- Mêweyên ku bi kêfa xwe dibijêrin...

**21**- Goştê teyran ên ku dilê wan dibijiyê...

**22** -Horiyên çavmezin...

**23**- Ew ên mîna sedefên hilandî û veşartî.

**24**- Ev perûya kirinên wan e ku ji wan re têne dayîn.

**25**- Ew li bihiştê kelevajî û gotineke ku xwediyê wê pê gunehkar bibe, nabihîzin.

**26**- Gotina ku bibihîzin tenê “silav û silav” e

**27**- Xelkê rexê rastê ma (tu dizanî) xelkê rexê rastê kî ne?!

**28**- Li bin gelyazên bêstrî û bêkelem in.

**29**- Di binê darmûzan de ne, ew ên ku gûşî bi gûşî li ser hev in.

**30**- Li bin sîberên dirêj ê seraqetî.

**31**- Li ber sûlavên avê ku daîm li herk in.

**32**- Di nav gelek mêweyan de ne.

**33**- Ku ne xelas dibin ne jî têne qedexekirin.

**34**- (Ew) li ser doşekên bilind in.

**35**- Bi rastî me horî ji nû ve afirandine.

**36**- Me ew keçik çêkirine.

**37**- Evîndarê mêrê xwe ne û ji hev re hevsal in.

**38**- Ew hemû ji bo xelkê ku deftera emelê xwe bi destê rastê werdigirin.

**39**- Gelek ji wan ji umetên pêşî ne..

**40**- Gelek ji wan ji paşiyan in.

**41**- Xelkê rexê çepê (ew ê ku deftera emelê wan dikeve destên wan ê çepê), ma (tu dizanî ka) xelkê rexê çepê kî ne?

**42**- Ew di nava germeba û ava kelijî de ne.

**43**- Ew li binê siya dukêleke reşetarî de ne.

**44**- Ku ew ne hênik e, ne jî xweş e.

**45**- Lewra ew beriya vê, ehlê keyf û zewqê bûn.

**46**- Li ser kirina gunehên mezin rikdar bûn (û wan tobe nedikir).

**47**- Digotin; gava ku em mirin û bûne ax û hestî, ma qey rast e ku dîsa em ê bêne saxkirin?

**48**- Erê ma bav û kalên me yên pêşîn jî (dê bêne saxkirin)?

**49**- (Ji wan re) Bibêje: Bi rastî yên pêşîn û yên paşîn jî...

**50**- Bi bal civana rojeke melûm ve dê bêne civandin.

ثُمَّ اِنَّكُمْ اَيُّهَا الضَّٓالُّونَ الْمُكَذِّبُونَۙ ﴿٥١﴾ لَاٰكِلُونَ مِنْ شَجَرٍ مِنْ
زَقُّومٍۙ ﴿٥٢﴾ فَمَالِؤُنَ مِنْهَا الْبُطُونَۚ ﴿٥٣﴾ فَشَارِبُونَ عَلَيْهِ مِنَ الْحَمِيمِۚ
﴿٥٤﴾ فَشَارِبُونَ شُرْبَ الْهِيمِۜ ﴿٥٥﴾ هٰذَا نُزُلُهُمْ يَوْمَ الدِّينِۜ ﴿٥٦﴾ نَحْنُ
خَلَقْنَاكُمْ فَلَوْلَا تُصَدِّقُونَ ﴿٥٧﴾ اَفَرَاَيْتُمْ مَا تُمْنُونَۜ ﴿٥٨﴾ ءَاَنْتُمْ
تَخْلُقُونَهُٓ اَمْ نَحْنُ الْخَالِقُونَ ﴿٥٩﴾ نَحْنُ قَدَّرْنَا بَيْنَكُمُ الْمَوْتَ
وَمَا نَحْنُ بِمَسْبُوقِينَۙ ﴿٦٠﴾ عَلٰٓى اَنْ نُبَدِّلَ اَمْثَالَكُمْ وَنُنْشِئَكُمْ ف۪ي مَا
لَا تَعْلَمُونَ ﴿٦١﴾ وَلَقَدْ عَلِمْتُمُ النَّشْاَةَ الْاُولٰى فَلَوْلَا تَذَكَّرُونَ ﴿٦٢﴾
اَفَرَاَيْتُمْ مَا تَحْرُثُونَۜ ﴿٦٣﴾ ءَاَنْتُمْ تَزْرَعُونَهُٓ اَمْ نَحْنُ الزَّارِعُونَ
﴿٦٤﴾ لَوْ نَشَٓاءُ لَجَعَلْنَاهُ حُطَامًا فَظَلْتُمْ تَفَكَّهُونَ ﴿٦٥﴾ اِنَّا لَمُغْرَمُونَۙ
﴿٦٦﴾ بَلْ نَحْنُ مَحْرُومُونَ ﴿٦٧﴾ اَفَرَاَيْتُمُ الْمَٓاءَ الَّذ۪ي تَشْرَبُونَۜ ﴿٦٨﴾
ءَاَنْتُمْ اَنْزَلْتُمُوهُ مِنَ الْمُزْنِ اَمْ نَحْنُ الْمُنْزِلُونَ ﴿٦٩﴾ لَوْ نَشَٓاءُ جَعَلْنَاهُ
اُجَاجًا فَلَوْلَا تَشْكُرُونَ ﴿٧٠﴾ اَفَرَاَيْتُمُ النَّارَ الَّت۪ي تُورُونَۜ ﴿٧١﴾
ءَاَنْتُمْ اَنْشَاْتُمْ شَجَرَتَهَٓا اَمْ نَحْنُ الْمُنْشِؤُنَ ﴿٧٢﴾ نَحْنُ جَعَلْنَاهَا
تَذْكِرَةً وَمَتَاعًا لِلْمُقْو۪ينَۚ ﴿٧٣﴾ فَسَبِّحْ بِاسْمِ رَبِّكَ الْعَظ۪يمِ ﴿٧٤﴾
فَلَٓا اُقْسِمُ بِمَوَاقِعِ النُّجُومِۙ ﴿٧٥﴾ وَاِنَّهُ لَقَسَمٌ لَوْ تَعْلَمُونَ عَظ۪يمٌۙ ﴿٧٦﴾

حزب ٤

**51**- Piştre bi rastî hûn, hey gelî jirêderketiyên derewîn!..

**52**- Teqez hûn ê ji dara rûlê (zeqûmê) bixwin.

**53**- Hûn ê zikê xwe her ji wê dagirin.

**54**- Hûn ê bi ser wê de jî ava kelijî vexwin.

**55**- Hûn ê wekî ku deveya tî êrîşî avê dike û vedixwe, avê vexwin.

**56**- Ha ev e, ziyafeta ku roja cezadanê ji wan re tê amadekirin.

**57**- Me hûn afirandin, vêca çima hûn (bi saxbûna piştî mirinê) yeqîn nakin?

**58**- Erê, ma ew avika (meniya) ku hûn dirijînin (malzarokan) ka çi ye?

**59**- Ma hûn (ji wê avikê însên) diafirînin an em diafirînin?

**60**- Me di nava we de mirin teqdîr kiriye û zora me dê neyê birin jî.

**61**- Da ku bi vî awayî em yên wekî we bînin şûna we û em we di afirandineke din de ku hûn nizanin (di roja qiyametê de) dîsa sax bikin.

**62**- Sond be, bi rastî we xulqandina xwe ya pêşîn zaniye. Veca çima hûn nafikirin û îbret nagirin (ku ew Xwedayê ku ji tuneyî hûn xuliqandin dê dîsa we sax bike?)

**63**- Erê ma ew tovê ku hûn diçînin hûn nabînin?!

**64**- Ma hûn wî hêşîn dikin, an em in yê hêşîn dike?

**65**- Eger me bixwesta me dê ew bikira qirş û qal (û kewaşe) û hûn ê jî poşman û xemgîn bimana.

**66**- (We dê bigotaya:) Bi rastî me ziyan kiriye.

**67**- Ya rast, em bêpar mane.

**68**- Ma hûn wê ava ku hûn vedixwin nabînin?!..

**69**- Ma we ew ji ewran aniye xwarê yan em in yê ku wê tînin xwarê?

**70**- Eger me bixwesta me dê ew şor bikiraya. Nexwe ma çima hûn spasiya (Ni'metên Xwedayê xwe) nakin?

**71**- Erê ma ew agirê ku hûn vêdixin nabînin?!..

**72**- Ma we dara wî peyda kiriye, yan em wê peyda dikin?

**73**- Me agir kiriye bîranîn (ji bo agirê axiretê) û ji bo rêwiyan jî feyde gerandiye.

**74**- Vêca bi arîkariya navê Xwedayê xwe yî mezin, Xwedê tesbîh bike (Wî ji her kêmasiyê pak bidêre, bibêje: Subhanellah).

**75**- Vêca ez bi cihê stêran sond dixwim...

**76**- Hûn dizanin ku ev, sondeke pir mezin e.


سورة الواقعة ٥٣٨

إِنَّهُ لَقُرْآنٌ كَرِيمٌ ﴿٧٧﴾ فِي كِتَابٍ مَكْنُونٍ ﴿٧٨﴾ لَا يَمَسُّهُ إِلَّا الْمُطَهَّرُونَ
﴿٧٩﴾ تَنْزِيلٌ مِنْ رَبِّ الْعَالَمِينَ ﴿٨٠﴾ أَفَبِهَٰذَا الْحَدِيثِ أَنْتُمْ مُدْهِنُونَ ﴿٨١﴾
وَتَجْعَلُونَ رِزْقَكُمْ أَنَّكُمْ تُكَذِّبُونَ ﴿٨٢﴾ فَلَوْلَا إِذَا بَلَغَتِ الْحُلْقُومَ ﴿٨٣﴾
وَأَنْتُمْ حِينَئِذٍ تَنْظُرُونَ ﴿٨٤﴾ وَنَحْنُ أَقْرَبُ إِلَيْهِ مِنْكُمْ وَلَٰكِنْ لَا تُبْصِرُونَ
﴿٨٥﴾ فَلَوْلَا إِنْ كُنْتُمْ غَيْرَ مَدِينِينَ ﴿٨٦﴾ تَرْجِعُونَهَا إِنْ كُنْتُمْ صَادِقِينَ ﴿٨٧﴾
فَأَمَّا إِنْ كَانَ مِنَ الْمُقَرَّبِينَ ﴿٨٨﴾ فَرَوْحٌ وَرَيْحَانٌ وَجَنَّتُ نَعِيمٍ ﴿٨٩﴾ وَأَمَّا
إِنْ كَانَ مِنْ أَصْحَابِ الْيَمِينِ ﴿٩٠﴾ فَسَلَامٌ لَكَ مِنْ أَصْحَابِ الْيَمِينِ ﴿٩١﴾
وَأَمَّا إِنْ كَانَ مِنَ الْمُكَذِّبِينَ الضَّالِّينَ ﴿٩٢﴾ فَنُزُلٌ مِنْ حَمِيمٍ ﴿٩٣﴾ وَتَصْلِيَةُ
جَحِيمٍ ﴿٩٤﴾ إِنَّ هَٰذَا لَهُوَ حَقُّ الْيَقِينِ ﴿٩٥﴾ فَسَبِّحْ بِاسْمِ رَبِّكَ الْعَظِيمِ ﴿٩٦﴾

سُورَةُ الْحَدِيدِ مَدَنِيَّةٌ
وَهِيَ تِسْعٌ وَعِشْرُونَ آيَةً

بِسْمِ اللَّهِ الرَّحْمَٰنِ الرَّحِيمِ
سَبَّحَ لِلَّهِ مَا فِي السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضِ وَهُوَ الْعَزِيزُ الْحَكِيمُ ﴿١﴾ لَهُ
مُلْكُ السَّمَاوَاتِ وَالْأَرْضِ يُحْيِي وَيُمِيتُ وَهُوَ عَلَىٰ كُلِّ شَيْءٍ قَدِيرٌ
﴿٢﴾ هُوَ الْأَوَّلُ وَالْآخِرُ وَالظَّاهِرُ وَالْبَاطِنُ وَهُوَ بِكُلِّ شَيْءٍ عَلِيمٌ ﴿٣﴾
هُوَ

**77** - (Sond be) ku ev Quraneke pîroz û pir birûmet e.

**78**- Di kitêbeke parastî (Lewhul Mehfûzê) de ye.

**79**- Ji firîşteyên ku (ji şirk û gunehan) hatine paqijkirin pê ve, dest nadin wê.

**80**- Ew kitêbeke wisa ye ku ji aliyê Perwerdegarê alemê ve hatiye şandin.

**81**- Êdî ma qey hûn vê Quranê vedişêrin û biçûk dibînin?

**82**- Di şûna ku hûn spasiya Ni'metên Xwedê bikin, hûn bawerî pê nayînin û nankoriyê dikin.

**83**- Vêca bila gava ku ruh digihîje qirikê.

**84**- Wê çaxê hûn berê xwe didinê (lê dimêzînin).

**85**- Em (bi ilm û agahiyên xwe) ji we bêhtir nêzîkî wî ne, lê belê hûn nabînin.

**86**- Madem hûn dê neyêne cezakirin...

**87**- De wî ruhî vegerînin wî cesedî; heke (bi rastî) hûn di doza xwe de rastgo ne.

**88**- Herçî ew kesê ku mirî ye, heke ew ji muqerebînan be (ew ên ku bi duristî qenciyê dikin û ber bi xêran ve dibezin).

**89**- Ji bo wî aramî, rizqê pak û bihişta xwedan Ni'met heye.

**90**- Eger ew ji wanên ku deftera emelê wan bi (rexê wan ê) rastê hatiye dayîn.

**91**-(Ji wan re dê bê gotin:) Ji bo te û ji bo xelkê milê rastê pir silav hene.

**92**- Lê belê ew miriyê ku ji derewdêrên jirêderketî be...

**93**- Ha ji bo wî jî ziyafeteke ji ava kelijî heye.

**94**- Encama wî jî werkirina di cehenemê de ye.

**95**- Bêguman ev rastiyeke yeqînî û misoger e.

**96**- Nexwe (di her gav û demê de) tu navê Xwedayê xwe yê mezin tesbîh bike.

## SÛREYÊ EL-HEDÎD

Sûreyê Hedîd 29 (bîst û neh) ayet e û li Medîneyê daketiye. Sûre, navê xwe ji ayeta 25'em girtiye ku tê de bêjeya El-Hedîd derbas bûye û bi mehneya hesin e.

### Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn

**1**- Çiqas tiştên di erd û asîmanan de hene ew Ellah Teala pak didêrin. Ew ê ku di hukimraniya xwe de serdest, di karê xwe de xwedî hîkmet.

**2**- Xwedanî û hukimraniya erd û asîmanan terxanî pê ve ye. Ew sax dike hem jî dimirîne û Ew li ser her tiştî kara ye.

**3**- Ellah Teala, yê pêşîn e (ku berî wî tiştek tune bû), yê paşîn e (ku di piştî wî re tiştek tune ye), yê zahir e (ku di ser wî re tu tişt tune ye û dîtbar e), yê batin e (ku nayê dîtin û nedîtbar e) û Ew, bi her tiştî zana ye.

هُوَ الَّذِى خَلَقَ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضَ فِى سِتَّةِ اَيَّامٍ ثُمَّ اسْتَوٰى
عَلَى الْعَرْشِ يَعْلَمُ مَا يَلِجُ فِى الْاَرْضِ وَمَا يَخْرُجُ مِنْهَا وَمَا يَنْزِلُ
مِنَ السَّمَاۤءِ وَمَا يَعْرُجُ فِيهَا وَهُوَ مَعَكُمْ اَيْنَ مَا كُنْتُمْ وَاللّٰهُ بِمَا
تَعْمَلُونَ بَصِيرٌ ﴿٤﴾ لَهُ مُلْكُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ وَاِلَى اللّٰهِ تُرْجَعُ الْاُمُورُ
﴿٥﴾ يُولِجُ الَّيْلَ فِى النَّهَارِ وَيُولِجُ النَّهَارَ فِى الَّيْلِ وَهُوَ عَلِيمٌ
بِذَاتِ الصُّدُورِ ﴿٦﴾ اٰمِنُوا بِاللّٰهِ وَرَسُولِهِ وَاَنْفِقُوا مِمَّا جَعَلَكُمْ
مُسْتَخْلَفِينَ فِيهِ فَالَّذِينَ اٰمَنُوا مِنْكُمْ وَاَنْفَقُوا لَهُمْ اَجْرٌ كَبِيرٌ ﴿٧﴾
وَمَا لَكُمْ لَا تُؤْمِنُونَ بِاللّٰهِ وَالرَّسُولُ يَدْعُوكُمْ لِتُؤْمِنُوا بِرَبِّكُمْ وَقَدْ
اَخَذَ مِيثَاقَكُمْ اِنْ كُنْتُمْ مُؤْمِنِينَ ﴿٨﴾ هُوَ الَّذِى يُنَزِّلُ عَلٰى عَبْدِهِ اٰيَاتٍ
بَيِّنَاتٍ لِيُخْرِجَكُمْ مِنَ الظُّلُمَاتِ اِلَى النُّورِ وَاِنَّ اللّٰهَ بِكُمْ
لَرَؤُفٌ رَحِيمٌ ﴿٩﴾ وَمَا لَكُمْ اَلَّا تُنْفِقُوا فِى سَبِيلِ اللّٰهِ وَلِلّٰهِ
مِيرَاثُ السَّمٰوَاتِ وَالْاَرْضِ لَا يَسْتَوِى مِنْكُمْ مَنْ اَنْفَقَ مِنْ
قَبْلِ الْفَتْحِ وَقَاتَلَ اُولٰۤئِكَ اَعْظَمُ دَرَجَةً مِنَ الَّذِينَ اَنْفَقُوا مِنْ بَعْدُ
وَقَاتَلُوا وَكُلًّا وَعَدَ اللّٰهُ الْحُسْنٰى وَاللّٰهُ بِمَا تَعْمَلُونَ خَبِيرٌ ﴿١٠﴾
مَنْ ذَا الَّذِى يُقْرِضُ اللّٰهَ قَرْضًا حَسَنًا فَيُضَاعِفَهُ لَهُ وَلَهُ اَجْرٌ كَرِيمٌ ﴿١١﴾

4- Ellah Teala, ew ê ku erd û asîman di şeş rojan de afirandine û piştre (bi awayekî babetî mezinahiya xwe) li ser textê hukimraniyê runiştiye. Ew, bi ya ku dikeve erdê û bi ya ku jê derdikeve, bi ya ku ji asmên tê xwarê û bi ya ku hildibe asmên jî dizane. Hûn li ku derê bin (bibin, her) Ew (bi ilm û agahiyên xwe) ligel we ye. Xwedê bi ya ku hûn dikin, bîner e.

5- Xwedanî û hukimraniya erd û asîmanan terxanî pê ve ye û her kar û bar bes bi bal Xwedê ve dê bêne vegerandin.

6- Xweda, şevê dixe (ser) rojê û rojê jî dixe (ser) şevê û Ew bi raza ku di sîngan de ye dizane.

7- Bawerî bi Xwedê û pêxemberê wî bînin û ji wî malê ku hûn tê de kirine şûngir (di riya Xwedê Teala de) xerc bikin. Ji we, ji yên ku bawerî anî û malê xwe di ber qenciyê de xerc kirin re, perûyeke mezin heye.

8- Ji bo çi hûn bawerî bi Ellah Teala nayînin, hal ev e ku Pêxember daxwaz dike ku hûn bi Xwedayê xwe bawerî bînin. Bi rastî Xwedê peymaneke asê û saxlem ji we stand (dema hûn ji pişta Adem Pêxember derxistin ku hûn ê bawerî pê bînin). Eger bi rastî hûn bawermend in (vêca bawerî bînin û rizgar bibin).

9- Xwedê ye, ew ê ku ji bendeyê xwe (Muhemmed) re nîşanên aşkera dişîne da ku we ji tarîtiyên (kufrê) derîne ronahiyê (îmanê). Bêguman Xwedê ji bo we dilnerm û dilovîn e.

10- Çi ji we bûye ku hûn malê xwe di riya Xwedê de xerc nakin? Hal ev e ku mîrata asîmanan û erdê her ji bo Xwedê ye (mulk dê lê vegere). Ne wekhev e; ew ên ku ji we beriya fetha Mekkeyê malê xwe di rêka Xwedê de xerc kirin û şer kirin. Ha ev, mertebaya van, ji yên ku piştre xerc kirin û şer kirin, teqez mezintir e. Digel vê jî, Xwedê peymana herî spehî (cenet) daye her du desteyan jî. Bêguman Ellah Teala ji kar û kiryarên we agahdar e.

11- Erê ma kî heye ku di rêka Xwedê de malê xwe bi rindî xerc bike, vêca Xwedê jî dê qat bi qat lê zêde bike û her jê re padaşeke giranbiha heye.

Dema ev ayeta ku li jorê bihurî, nazil bû; Ebû Dehdahê Ensarî got: Ya Resûlellah! Qey Xwedê deynekî ji me dixwaze? Gotiyê: Belê, ya Ebû Dehdah! Vêca Ebû Dehdah gotiye: Ya Resûlellah, destê xwe nîşanî min bide. Resûlullah jî destê xwe dayê. Ebû Dehdah gotiye: Min bostanê xwe bi deyn da Rebê xwe. Di nava bostên de şeş sed darxurmeyên Ebû Dehdahî hebûn û dayîka Dehdah û zarokên wê jî li navê bûn. Ebû Dehdah gazî dayîka xwe kiriye û gotiyê: Ya Diya Dehdah! Wê jî gotiye: Libê. Gotiyê: Ji navê derkeve, min ew bi deyn daye Rebê xwe. Diya Dehdah jî gotiye: Ya Ebû Dehdah, bazara te li ser xêrê be û mal û zarokên xwe ji navê veguhastin.

يَوْمَ تَرَى الْمُؤْمِنِينَ وَالْمُؤْمِنَاتِ يَسْعٰى نُورُهُمْ بَيْنَ اَيْدِيهِمْ
وَبِاَيْمَانِهِمْ بُشْرٰيكُمُ الْيَوْمَ جَنَّاتٌ تَجْرِي مِنْ تَحْتِهَا الْاَنْهَارُ
خَالِدِينَ فِيهَا ذٰلِكَ هُوَ الْفَوْزُ الْعَظِيمُ ﴿١٢﴾ يَوْمَ يَقُولُ الْمُنَافِقُونَ
وَالْمُنَافِقَاتُ لِلَّذِينَ اٰمَنُوا انْظُرُونَا نَقْتَبِسْ مِنْ نُورِكُمْ قِيلَ
ارْجِعُوا وَرَٓاءَكُمْ فَالْتَمِسُوا نُورًا فَضُرِبَ بَيْنَهُمْ بِسُورٍ لَهُ بَابٌ
بَاطِنُهُ فِيهِ الرَّحْمَةُ وَظَاهِرُهُ مِنْ قِبَلِهِ الْعَذَابُ ﴿١٣﴾ يُنَادُونَهُمْ اَلَمْ نَكُنْ
مَعَكُمْ قَالُوا بَلٰى وَلٰكِنَّكُمْ فَتَنْتُمْ اَنْفُسَكُمْ وَتَرَبَّصْتُمْ وَارْتَبْتُمْ
وَغَرَّتْكُمُ الْاَمَانِيُّ حَتّٰى جَٓاءَ اَمْرُ اللّٰهِ وَغَرَّكُمْ بِاللّٰهِ الْغَرُورُ ﴿١٤﴾ فَالْيَوْمَ
لَا يُؤْخَذُ مِنْكُمْ فِدْيَةٌ وَلَا مِنَ الَّذِينَ كَفَرُوا مَاْوٰيكُمُ النَّارُ هِيَ
مَوْلٰيكُمْ وَبِئْسَ الْمَصِيرُ ﴿١٥﴾ اَلَمْ يَاْنِ لِلَّذِينَ اٰمَنُٓوا اَنْ تَخْشَعَ
قُلُوبُهُمْ لِذِكْرِ اللّٰهِ وَمَا نَزَلَ مِنَ الْحَقِّ وَلَا يَكُونُوا كَالَّذِينَ
اُوتُوا الْكِتَابَ مِنْ قَبْلُ فَطَالَ عَلَيْهِمُ الْاَمَدُ فَقَسَتْ قُلُوبُهُمْ وَكَثِيرٌ
مِنْهُمْ فَاسِقُونَ ﴿١٦﴾ اِعْلَمُٓوا اَنَّ اللّٰهَ يُحْيِي الْاَرْضَ بَعْدَ مَوْتِهَا قَدْ
بَيَّنَّا لَكُمُ الْاٰيَاتِ لَعَلَّكُمْ تَعْقِلُونَ ﴿١٧﴾ اِنَّ الْمُصَّدِّقِينَ وَالْمُصَّدِّقَاتِ
وَاَقْرَضُوا اللّٰهَ قَرْضًا حَسَنًا يُضَاعَفُ لَهُمْ وَلَهُمْ اَجْرٌ كَرِيمٌ ﴿١٨﴾

وَالَّذِينَ

**12**- Roja (qiyametê) tu dê bibînî ku mêrên bawermend û jinên bawermend, va ye nûra wan li pêşiya wan û rastê wan li ber wan digere (û ji wan re dê bê gotin:) Îro, mizgîniya we cenet in, ew ên ku di bin (dartewl û qesrên) wan de çem diherikin û hûn ê her û her li wan bimînin. Ha ev e serfirazî û xelasiya mezin.

**13**- Roja ku mêr û jinên munafiq dê ji yên bawermend re bibêjin; li benda me bimînin, da em jî (ji xwe re) ji nûra we parçeyekî wergirin. Dê ji wan re bê gotin: Li pişt xwe (li dinyayê) vegerin vêca (li wir) li nûrê bigerin. Êdî di neqeba wan de navberek tê danîn, jê re dergehek heye ku ji rexê hundir ve (li aliyê bawermendan) tê de rehmet e û ji rexê derve (li aliyê munafiqan) jî tê de ezab e.

**14**- Munafiq gazî bawermendan dikin (û dibêjin:) Ma em (li dinyayê) ne ligel we bûn (ji bo çi we dev ji me berda)? Bawermend ji wan re dibêjin: Erê hûn (li berçav) digel me bûn, belê we bi xwe (bi dirûtîyê) xwe helak kir, we (bo mumînan) çavnêriya nebaşiyê dikir, (der barê îslamê de) hûn ketin gumanê, hêviyên pûç hûn xapandin heyanî ku fermana Xwedê hat û şeytên bi Xwedê hûn xapandin (ku ew ê we efû bike).

**15**- Vêca (gelî munafiqan!) îro, ne ji we û ne ji yên bêbawer (gawir) tu gerew dê neyê qebûlkirin. Cihê we agir e, ew e ji bo we xwedî û heval. Ew cih çi pîsecihê lêvegerê ye!

**16**- Erê ma ji bo yên ku bawerî anîn hê jî wext nehatiye ku bi zikrê Xwedê û bi Quranê dilên wan bitirse û ew nebin wekî wan ên ku berî niha kitêb ji bo wan hatin, vêca piştî sal û zemanan dilê wan hişk bû û gelek ji wan jî ji rê derketine.

**17**- Agahdar bin! Bi rastî Xwedê Teala erdê piştî hişkbûna wê hêşîn dike. Bi rastî ji bo hûn têbigihîjin Me nîşanên (yekîtî û qudreta) xwe ji bo we aşkera kirin.

**18**- Bêguman mêrên xêrker û jinên xêrker û yên ku malên xwe di rêka Xwedê de dane, xêra wan qat bi qat zêde dibe û ji bo wan padaşeke (xelateke) giranbiha heye.

بِسْمِ اللّٰهِ الرَّحْمٰنِ الرَّحِيمِ

اَلْحَمْدُ لله رَبِّ الْعَالَمِينَ، وَالصَّلَاةُ وَالسَّلَامُ عَلىَ رَسولِنَا مُحَمَّدٍ وَعَلىَ الِهِ وَصَحْبِهِ أَجْمَعِينَ. اَللَّهُمَّ ارْحَمْني بِالْقُرانِ وَاجْعَلَهُ لي إِمَاماً وَنُوراً وَهُدىً وَرَحْمَةً اَللَّهُمَّ ذَكِّرْني مِنْهُ مَا نَسِيتُ وَعَلِّمْني مِنْهُ مَا جَهِلْتُ وَارْزُقْني تِلاَوَتَهُ آناءَ اللَّيْلِ وَأَطْرَافَ النَّهارِ وَاجْعَلْهُ لِي حُجَّةً يَا رَبَّ الْعَالَمِينَ اللَّهُمَّ أَصْلِحْ لي دِينِيَ الَّذي هُوَ عِصْمَةُ أَمْرِي وَأَصْلِحْ لِي دُنْيَايَ الَّتي فِيهَا مَعَاشِي وَأَصْلِحْ لي آخِرَتِيَ الَّتي فِيهَا مَعَادِي وَاجْعَلِ الْحَيَاةَ زِيَادَةً لي في كُلِّ خَيْرٍ وَاجْعَلِ الْمَوْتَ رَاحَةً لي مِنْ كُلِّ شَرٍّ اللَّهُمَّ اجْعَلْ خَيْرَ عُمْرِي آخِرَهُ وَخَيْرَ عَمَلِي خَوَاتِمَهُ وَخَيْرَ أَيَّامِي يَوْمَ أَلْقَاكَ فِيهِ اللَّهُمَّ إِنّي أَسْأَلُكَ عِيشَةً هَنِيَّةً وَمِيتَةً سَوِيَّةً وَمَرَدّاً غَيْرَ مُخْزِي وَلا فَاضِحِ اللَّهُمَّ إِنّي أَسْأَلُكَ خَيْرَ الْمَسْأَلَةِ وَخَيْرَ الدُّعَاءِ وَخَيْرَ النَّجاحِ وَخَيْرَ الْعِلْمِ وَخَيْرَ الْعَمَلِ وَخَيْرَ الثَّوَابِ وَخَيْرَ الْحَيَاةِ وَخَيْرَ المَمَاتِ وَثَبِّتْني وَثَقِّلْ مَوَازِيني وَحَقِّقْ إِيمَاني وَارْفَعْ دَرَجَتِي وَتَقَبَّلْ صَلاتي وَاغْفِرْ خَطِيئَاتي وَأَسْأَلُكَ الْعُلَا مِنَ الْجَنَّةِ اللَّهُمَّ إِنِّي أَسْأَلُكَ مُوجِبَاتِ رَحْمَتِكَ وَعَزَائِمَ مَغْفِرَتِكَ وَالسَّلامَةَ مِن كُلِّ إِثْمٍ وَالْغَنِيمَةَ مِنْ كُلِّ بِرٍّ وَالْفَوْزَ بِالْجَنَّةِ وَالنَّجَاةَ مِنَ النَّارِ اَللَّهُمَّ أَحْسِنْ عَاقِبَتَنَا في الأُمُورِ كُلِّهَا وَأَجِرْنَا مِنْ خِزْيِ الدُّنْيَا وَعَذَابِ الآخِرَةِ اَللَّهُمَّ اقْسِمْ لَنَا مِنْ خَشْيَتِكَ مَا تَحُولُ بِهِ بَيْنَنَا وَبَيْنَ مَعْصِيَتِكَ وَمِنْ طَاعَتِكَ مَا تُبَلِّغُنَا بِهَا جَنَّتَكَ وَمِنَ الْيَقِينِ مَا تُهَوِّنُ بِهِ عَلَيْنَا مَصَائِبَ الدُّنْيَا وَمَتِّعْنَا بِأَسْمَاعِنَا وَأَبْصَارِنَا وَقُوَّتِنَا مَا أَحْيَيْتَنَا وَاجْعَلْهُ الْوَارِثَ مَنَّا وَاجْعَلْ ثَأْرَنَا عَلى مَنْ ظَلَمَنَا وَانْصُرْنَا عَلىَ مَنْ عَادَانَا وَلا تَجْعَلْ مُصِيبَتَنَا في دِينِنَا وَلا تَجْعَلِ الدُّنْيَا أَكْبَرَ هَمِّنَا وَلا مَبْلَغَ عِلْمِنَا وَلا تُسَلِّطْ عَلَيْنَا مَنْ لَا يَرْحَمُنَا اللَّهُمَّ لا تَدَعْ لَنَا ذَنْباً إِلاَّ غَفَرْتَهُ وَلا هَمّاً إِلاَّ فَرَّجْتَهُ وَلا دَيْناً إِلاّ قَضَيْتَهُ وَلا حَاجَةً مِنْ حَوائِجِ الدُّنْيَا وَالآخِرَةِ إِلاّ قَضَيْتَهَا يَا أَرْحَمَ الرَّاحِمِينَ رَبَّنَا آتِنَا في الدُّنْيا حَسَنَةً وَفي الآخِرَةِ حَسَنَةً وَقِنَا عَذَابَ النَّارِ وَصَلَّى اللهُ عَلى نَبِيِّنَا مُحَمَّدٍ وَعَلى آلِهِ وَأَصْحَابِهِ الأَخْيَارِ وَسَلَّمَ تَسْلِيماً كَثِيراً

## DU'AYA XETIMKIRINA QURANA PÎROZ

**Bi Navê Xwedayê Mihrîvanê Dilovîn**

Hemd ji Xwedayê alemê re be. Selat û selam li ser pêxemberê me Muhemmed û li ser tevekê ehl û hevalên wî be.

Xwedayê min! Bi xatirê xwendina vê Quranê li min were rehmê, wê ji min re bike pêşewa û ronahî, bike rasterê û dilovanî. Xwedayê min! Ya min ji Qur'anê jibîrkirî bîne bîra min, ya ez jê nizanim fêrî min bike, di şev û rojê de xwendina wê bike nesîbê min û wê ji min re bigerîne delîl û hêncet, ey perwerdegarê aleme!

Xwedayê min! Ew dinê ku parastina rewşa min e û ew dinya ku jiyara min tê de ye ji bo min çaksaz bike. Axreta min a ku lêvegera min e çaksaz bike, jiyanê bike sebebê zêdekirina xêran û mirinê bike sebebê xilasiya ji her nebaşiyê. Xwedayê min! Dawiya emrê min xêr bigerine, dawiya kare min xêr bigerine û roja ez bê me hizûra te xêr bigerîne.

Xwedayê min! Ez jiyaneke xweş û mirineke bêkêmasî ku me li axretê vegerine, bêzillet û bêhetîketî ji te dixwazim. Xwedayê min! Ez xwestina baş, duaya baş, serfiraziya baş, zanîna baş, karê baş, xêra baş, jiyana baş û mirina baş ji te dixwazim. Min li ser rastiyê bihêle, mêzîna xêrê min giran bike, îmana min misoger bike, dereca min bilind bike, nimêja min qebûl bike, li gunehên min bibore û ez cenneta bilind ji te dixwazim.

Xwedayê min! Birastî ya ku dibe sebebê dilovaniya te, ya ku dibe sebebê misogeriya lêborina te, selametiya ji her gunehî, bidestêxistina her xêrê, serfiraziya bi cennetê û xelasiya jî êgir ji te dixwazim. Xwedayê min! Di tevekê kar û barê me de aqîbeta me xêr bigerîne, me ji rezîliya dinyayê û ezabê axretê biparêze.

Xwedayê min! Tirseke ku nehêle em gunehan bikin, taetekî ku me bigihîne cenneta te, qinyateke ku musîbetên dinyayê li ser me sivik bike ji bo me nesîb bike. Bi sehkirin û dîtina rastiyê û bi qeweta li ser pêkanîna heqiyê, heyanî em sax bin me pêxweş bike û vê têgihijî û pêxweşiyê ji yên pey me re bigerîne mîrate. Kîn û heyfhilanîna me bes li ser yê li me zılim kirî bigerîne û li ser yê tadayî li me kirî arîkariya me bike. Ya ku kêmasiyê têxe dînê me negihîne me, mal û meqamê dinyayê ji bo me neke mirada herî mezin û dinyayê neke armanca zanîna me û yên li me rehmê neke li ser me deshilat û hukimran neke.

Xwedayê min! Li tevekê gunehên me bibore, kul û derdên me bibe, tevekê deynên me li ser me rake, her çiqas hewceyîyeke dinya û axretê hebe wê pêk bîne, hey dilovantirê dilovînan!

Xwedayê me! Di dinyayê de başiyê bide me û di axretê de jî başiyê bide me û me ji ezabê êgir biparêze.

Selat li ser pêxemberê me Muhemmed û li ser ehle wî û ashabê wî be û pir pir selam li ser bin.

AMÎN

## PÊŞGOTIN

### Bi navê Xwedayê Mihrîbanê Dilovîn

Birastî hemd (pesn û sipasî) ji Xwedê re ye. Em pesnê wî didin, arîkarî û lêborîna gunehên xwe jê dixwazin.

Em ji ber neqenciyên nefsa xwe û ji ber kar û kiryarên xwe yên nebaş xwe davêjine ber penah û nîgaha Xweda.

Xwedê kê serwext bike êdî tu rêşaşkar jê re nîn in û kê jî ji riya heq derîne êdî jê re tu serwextkarê riya heq nîn in.

Ez şahdeyiyê didim ku ji Ellah Teala pê ve tu xweda tun in; ew yek û bêhemkuf e, ez şahdeyiyê didim ku Muhemmed (s) bende û pêxemberê wî ye.

**Hey gelî mirovan! Hay ji mafê Xwedayê xwe hebin (fermanên wî bicih bînin û ji heramê wî xwe dûr bigrin), ew Xwedayê ku hûn ji yek kesî (Adem), afirandiye,jina wî jî jê afirand û ji her duyan jî gelek mêr û jin zêde kirin. Hay ji (emr û nehyê) Xwedê hebin, ew ê ku hûn bi xatirê wî ji hev dixwazin û hay ji pêkanîna mafê lêziman jî hebin (ku hûn bi paşguhê xwe ve neavêjin). Bêguman Xwedê hemin li ser we zêrevan e.** (Nîsa: 1)

**Gelî yên ku bawerî anîne! Bi rast û duristî teqwadariya Xwedê bikin û zinhar hûn her misilman bimirin!** (Alî Îmran: 102)

**Gelî yên ku bawerî anîne! Xwe ji (bêemriya) Xwedê biparêzin û gotina rast û durist bibêjin. Xwedê dê kar û barên we li hev bîne û li gunehên we bibore. Kî, bi gotina Xwedê û pêxemberê wî bike, wî serkeftineke mezin bi dest xistiye.** (Ehzab: 70, 71)

Xwedayê min! Rehmet û dilovaniya xwe li Muhemmed û ehlê wî bibarîne. Meqamê wî yê mehderiyê bilindtir bike, her wekî ku te rehmet û dilovanî li Îbrahîm û ehlê wî kiriye. Birastî tu hêjayê pesindayînê yî û tu pîroz î. Xwedayê min! Bereketa xwe li Muhemmed û ehlê wî bike her wekî te li Îbrahîm û ehlên wî jî kirî. Birastî tu hêjayê pesindayînê yî û tu pîroz î.

Peyva herî rast kitêba Xwedê ye. Rêberiya herî rind ya Muhemmed e *(s)*. Kar û barên herî nebaş nûpeydebûna di dîn de ye. Her çi nûpeydebûna ku di dîn de ye bid'et e. Her bid'et jî jirêderketin e. Her jirêderketin jî di êgir de ye.

Pesn û spasî ji Xweda re bin, ewê ku di kitêba xwe ya pîroz de gotî: **Gelî mirovan! Bêguman me hûn ji mêrekî û jinekê afirandine û me hûn kirine qewm û qebîle da ku hûn (maf û hiqûqê) hev nas bikin. Bêguman li cem Xwedê yê herî birûmet, ew ê ku heq û huquqa bêtir diparêze. Bêguman Xwedê zana ye, agahdar e.** (Hucurat: 13)

Ew Xwedayê ku erd û asîman afirandin û li ser erdê pêxember ji bo mirovan kirine çiraya hîdayet, dadperwerî û duristiyê. Însan bi fikirîn û xeberdanê ji ajal û her zindiyî veqetand û ew kire berpirs û xwedanerkên pîroz. Ew bê rêhber nehiştin; ji bo wan ji nav wan pêxember şandin, vêca kitêb jî ji bo pêxemberan hinart da ku hukmê Xwedê li nav bendeyên wî bi cih bikin û wekhevî, dadperwerî û biratiyê di nava wan de misoger bikin. Ew Xwedayê ku eqil daye mirovan da ku pê bifikirin, qencî û neqenciyê ji hev nas bikin. Ew Xwedayê ku kerem li mirovan kirî ku ew ji navbera hemû mexlûqên xwe bijartin û di ser hemû heyiyan re girtine. Ew Xwedayê ku însan êl bi êl û millet bi millet afirandin da ku maf û hiqûqê hev nas bikin û êrîşî hev nekin; tenê arîkariya hev bikin û ji qabiliyet û azmûnên hev parmendî bibin. Vêca bi vî awayî sererdê ava û çaksaz bikin. Dîsa hemd û sena jê re bin ku ji bo her gel, xelk û milletî pêxemberek ji bo wan ji nav wan bi xwe hinart da ku Xwedayê wan a heq bi wan bide naskirin, wan ji bendayetiya bendan rizgar bike û tenê ji Xwedê re bike bende. Wan

ji reştarî û zulma kufrê derîne ronahiya îslamê û wan bigihîne bextiyariya dinya û axretê.

**Dirûd û silav** li ser Muhemmed (s) bin, ewê ku Qur'ana Pîroz jê re hatiye şandin da ku hemû xelk û welatan ji tarîstanî û pûtperestiyê, koletî û bindestiyê, sitemkarî û paşverûtiyê, bêramanî û xwenenasiyê derîne û azad bike. Ewê ku bi kitêba jê re hatî şandin ku Qur'an e hemû kitêbên din ji rewacê hatin hilanîn û hukmê şerî'eta wî dê hetta roja qiyametê berdewam bimîne. Ewê ku pêxember jê re hatiye hinartin da ku hemû mirovan ji teqana şirk û êrîşkariyê derîne yekdêrîniya zelal û hemû mirovan bi ni'meta Xwedayê wan ji hev re bike dost û bira. Ewê ku şewqa pêxembertiya wî ronahiya xwe daye tevê cîhanê. Ewê ku ji bo hemû xelk û welatan wek rehmet û dilovanî hatiye hinartin da ku riya rast û durust nîşanî mirovan bide; wan vexwîne bal 'eqîde û baweriya bi Xweda. Bîr û baweriyeke aşkere û zelal di dilê wê de tam bicih bike. Mizgîniya xêrê û bihiştê bide yên ku bawerî pê bînin û yên ku bawerî pê neyênin jî ji agirê dojehê hişyar bike. Ewê ku piştî di nava bîst û sê salan de dilovanî li erdê bi cih kir û peyama Xwedayê xwe ji mirovan re ragihand û erka xwe ya teblîxê bêkêmasî bi cih anî, tovê wekhevî, dadmendî, dostanî û biratiyê di dile mirovan de çand û li pey xwe ji mirovan re îlm û îrfan hişt. Vêca bi serbilindî canê pîroz da û çû hizûra Xwedayê xwe yê bexşende. Xwedayê wî wekî ku ew ji bo pêxemberiyê bijartibû vêca ew ji bo cîrantiya xwe jî bijart.

**Dirûd û silav** li ser malbat û xizmên wî bin ku ji bo mirovan bûne numûneya bêhnpakî, rûmet, namûs, merdî, têkoşîn û berxwedanê, bûne mînaka hemû rewîştên pîroz û pak. Ewên ku her tim ji bo bindest û jaran bûne destegîr û piştevan. Ewên ku Pêxember di pêşiya wefata xwe de wesiyeta wan bi vê rewşê li ummetê kirî: "**Zinhar der heqê malbata min de min neêşînin**.

**Dirûd û silav** li ser sehabî û peyrewên Pêxember bin, ewên ku bûne çiraya hîdayetê;xelk û welat ji gemara şirk, kufr û zordestiyê rizgar kirin û bûne sersebebê misilmanbûna xelk û alemê. Ew sehabiyên ku Xwedê di bara wan de gotiye: "**Xwedê ji wan razî bûye û ew jî ji Xwedayê xwe razî bûne**."

Gelî xwendevanên xweşdivî û birûmet! Wekî ku hûn jî dizanin ji nan û avê jî hîn bêhtir pêdiviya me bi peyamên Rebbê me heye. Divê em dînê xwe ji serkaniya zelal hîn bibin ku ew jî kitêba pîroz gotina Xwedê ye. Ev jî tenê dikare bi navgîna wergerê pêk bê. Vêca me jî dest bi wergera maneya Qur'ana Pîroz li ser zimanê Kurdî kir û bi destûra Xwedê me ew temam kir. Em ji cenabê zatê pak ê Xweda hêvîdar in ku vî karê pîroz li cem xwe ji me qebûl bike. Dîsa em hêvîdar in ku gelê me yê bindest û jar vê xebata giranbiha û gencîneya tije dur û gewher ji çanda xwe ya dewlemend bipejirîne.

Gerek e em, bi girîngî li ser Qur'an û mane û têgihayên wê rawestin, wan ji xelkê re bidin zanîn da ku ew rast bêne fehmkirin. Ji bo vê jî divê pêşî em di bara zanîn û wergera maneya Qur'ana Pîroz de agahiyan bidin da ku xwendevan serwext bibin û têbigihin. Ha va ye em der barê wê de ji bo we xoşewîstên kurd re hin agahiyan pêşkêş dikin:

## DER BARÊWERGERA MANEYA QUR'ANA PÎROZ DE

### Mijara Wergerandina Qur'ana Pîroz

**Wergera Qur'anê**: Veguhastina maneya Qur'anê bi bal zimanekî xeyrê erebî ve ye.

**Armanc:** Agahdarkirina kesên ku bi zimanê erebî nizanin bi fermanên Xweda ye.

**Beşên Wergerê:**

Du beş werger hene:

**A- Wergera herfî** (herf bi herf).

**B- Wergera bi tefsîrî.**

Wergera herfî,mebest jê ew e ku Qur'an bi bêje, mufredat, hevok û pêkhatina xwe bi awayekî ku bi eslê wê re ahengsaz be, veguhêze bal zimanekî xeyrê erebî ve. Wek numûne ku bê

gotin: "Qur'ana bi zimanê kurdî".Ev cure werger dişibe danîn û rêzkirina bêjeyên hevmane di şûna hev de. Hin kes ji vê cure wergerê re "Wergera Lefzî" dibêjin.

Wergera tefsîrî, mebest jê ew e ku wergêr bi bêjeyan re zêde serê xwe neêşîne, tenê maneya ayetan werdigerîne ser zimanê ku ew dixwaze. Ew wergêr divê eslê wê, armanca wê fêm bike paşê wergerîne ser zimanekî din ve û pêwiste ew werger bi eslê wê re jî sadiq û ahengsaz be. Ji vê cure wergerê re jî "Wergera herfî û wergera maneyî" tê gotin.

### Mercên Wergerê

1- Divê wergêr zimanê kitêbê û zimanê ku lê werdigerîne jî baş bizane.

2- Divê uslûb, taybetmendî û navlêkên her du zimanan rind bizane.

3- Divê peyva wergerê rast be û cihê ya eslî bigre.

4- Divê werger mane û armancên a eslî bide zanîn.

Ji bo wergera herfî, digel van çar mercan du mercên dîtir jî hene ku ev in:

1- Divê di zimanê wergerê de mufredatên têkûz hebin ku eynê wekî mufredatên eslî bin.

2- Divê her du ziman di cînavên nehanî û pêgehên ku hevokan bi hev ve girêdidin de û di rêzkirina bêjeyan ya di komikê de bişibin hev.

### Gelo Wergera Herfî Durist e?

Li gorî ku em hînî mana her du beş û mercên wergerê bûn wergera herfî ji ber çend sedeman ne durist e.

1- Birastî divê Qur'an her bi herfên erebî tenê bête nivîsîn da ku guhertin tê de çênebe.

2- Lewra; di zimanên xeyrê erebî de bêje, mufredat û cînavên ku cihê yên erebî tam dagirin tune ne.

3- Wergera tenê herfî/lefzîmaneyê xirab dike û dike ku îfade jî pûç bibe.

Wek numûne, gava ku em bixwazin vê ayetê bi awayekî lefzî wergerînin:

وَلَا تَجْعَلْ يَدَكَ مَغْلُولَةً إِلَى عُنُقِكَ وَلَا تَبْسُطْهَا كُلَّ الْبَسْطِ فَتَقْعُدَ مَلُومًا مَحْسُورًا" Tu destê xwe bi bal stuyê xwe ve neşidîne û bi temamî jî veneke... "

Ev manedayîn li gorî tîp û peyvan rast e, belê mebesta Qur'anê jê nayê fêmkirin. Lazim e em wisa mane bikin; "Tu destê xwe ji temahkarî bi bal stuyê xwe ve neşidîne, ango destgirtî mebe, li ser eyal û feqîran înfaq bike û bi temamî destvekirî jî mebe ku tu zêdeyî quweta xwe înfaq bikî; paşê tu dê lomedar û destevala rûnê.

### Wergera Maneya Qur'anê

Wergera maneya Qur'anê hîn di serdema Resûlûllah *(s)* de hatiye destpêkirin. Li gorî hin rîwayetan xelkê faris ji Selmanê Farisî xwestine ku ji bo wan Sûreyê Fatîhê wergerîne farisî û wî jî wergerandiye û ji wan re şandiye.

Wergera maneya Qur'anê li gorî wan mercên ku me berê gotî durist e, belê jê re Qur'an nayê gotin. Belkî; mirov dikare jê re "Şîroveya Qur'anê, Vekolîna Qur'anê, Tefsîra Qur'anê û Wergera Maneya Qur'anê" bibêje.

Piştî ku me hukmê wergerê û beş û mercên wê ragihandin, vêga jî; beriya ku em behsa ilmên Qur'anê bikin, em dixwazin di bara pêdiviya wergera maneya Qur'anê li ser zimanê kurdî de çend nuqteyên girîng û agahiyên pêdivî bidin zanîn.

1- Gelê kurd, ji serê pêşîn ve, hîn di dîwana pak a Resûlê Xwedê de *(s)* cihê xwe girtiye û wekî: Suheybê Rûmî, Selmanê Farisî, Bilalê Hebeşî Gavanê kurdî jî beşdarî têkoşîna heqiyê bûye, li ser destê wî jî gellek xelk misilman bûne û nêzîkî deh hedîsên Pêxember jê hatine rîwayetkirin. Lêbelê piraniya xelkê kurd di serdema xelîfê duyem Umer kurê Xettab de *(r)* bi riza dilê xwe misilman bûne. Di avakirin û belavkirina medeniyeta îslamê de rolekî çalak leyistine û xizmetên giranbiha ji dînê xwe re kirine. Di rojên pir tehl û teng de cîhana îslamî li hemberî êrîşên xaçperest û xwînmijan parastine. Di nava ummetê de alaya dadmendî, wekhevî û biratiya îslamî bilind kirine û misilman ji kabûsa

tirsonekî, tiralî û nekariyê xelas kirine. Kesê ku meraq bike, bila ji kerema xwe li tarîxa bi rûmet a dewleta Eyyûbî binêre û bixwîne, dîsa bila li kitêbên nivîskarên Ewropî binêre, bixwîne da ku cîhad, huner û xebata kurdan a ji bo dîn û alema îslamî bibîne.

2- Bi sedema ku îslam ji bo hemû xelk, welat û çaxan hatiye şandin, jêdera îslamê ya yekem jî Qur'ana Pîroz e, naxwe divê maneya wê li ser zimanê kurdî û zimanê hemû xelk û alemê bê wergerandin da ku yekser ew were fehmkirin. Lewra peyama Qur'anê cîhanşumûl e; ji bo her kesî hatiye hinartin.

3- Wergerandina maneya Qur'anê li ser zimanê kurdî ji gellek aliyan ve pêdivî ye.

**a) Ji aliyê dînî ve:** Lewra Qur'an kitêba dînê Xwedê ye. Ka çawa ew ji bo hemû xelkan hatibe hinartin, her wisa ji bo kurdan jî hatiye hinartin. Naxwe, divê fermanên Xweda ji kurdan re bêne ravekirin da ku ew li gorî peyamên Qur'anê jiyana xwe birêsin. Hem jî ji ber ku Xwedê gotiye: **Sond be, me, ji bo her milletekî pêxemberek şand (da ku bibêjin:) bes Xwedê bihebînin û xwe ji taxût dûr bigirin. Vêca hin ji wan Xwedê ew rasterê kirin û hin ji wan jî ezab li ser wan misoger bû. (Gelî muşrikan!) De di erdê de bigerin û bibînin ka encama derewînan çawa bûye!** (Nehl: 36)

Li gorî ku em ji ayetê fehm dikin, wezîfeya pêxember û warisên wî ew e ku peyamên Rebbê xwe ji millet û civata xwe re bidin zanîn. Ji ber ku zimanê Qur'anê erebî ye û hîç ne mumkin e ku her kes hînî erebî bibe, nexwe ji bo ku xelk peyama Rebbê xwe fehm bikin îhtîmaleke tenê dimîne ku ew jî ev e: Divê maneya wê li ser zimanên misilmanan bê wergerandin da ku maneya wê bi zimanên xwe bixwînin û ev yek jî tenê bi riya tercumê(wergerê) çêdibe. Xwedê ev heqîqet jî di ayeteke dîtir de wiha ragihandiye: **Me her pêxemberek bes bi zimanê gelê wî şand da ku ji wan re (bi zimanê wan fermanên Xwedê) eşkere bike. Vêca Xwedê kê bivê ji rê derdixe û kê jî bivê tîne riya rast. Bi rastî ew (di kar û barê xwe de) serdestê karbinecih e.** (Îbrahîm: 4)

Li gorî daraz, hukm û pêdiviya vê ayeta pîroz lazim e ku ferman û qedexeyên Xwedê bi zimanê şêrîn ê kurdî bêne tercumekirin da ku kurd wan fehm bikin, li gorî wan tevbigerin û ji fedl û bereketa Qur'anê sûdê wergirin.

**b) Ji aliyê edebî ve:** Ji aliyê edebî û toreyî ve jî lazim e ku maneya Qur'anê bi zimanê kurdî bê wergerandin. Lewra Qur'an di warê edebiyat û wêjeyî de, di warê fesahet û belaxetê de di asteke wisa de ye ku li cîhanê hîç ne mumkin e bi tu zimanî tu berhemeke edebî bigihîje nêzîkî wê. Ji ber vê yekê, divê hemû sipehîtî, qise, numûne û gencîneyên ku Qur'ana Mecîd ji wan xeber daye û ew eşkere kirine bi zimanê kurdî jî bêne wergerandin da ku zimanê me ji wan hemû rindiyan bêpar nemîne; dewlemendtir bibe û ji aliyê xwebêjî ve hîn bêhtir bi pêş ve here.

**c) Ji aliyê zanînî ve:** Ji aliyê zanîn û ilmî ve jî lazim e ku maneya Qur'anê li ser zimanê kurdî bê wergerandin. Lewra Qur'an jêdera hemû zanîn û ilman e. Ji bo ku kurdî di hemû warên zanînê de bi pêş ve here, hem jî ji bo ku maneya Qur'anê ji zimanê kurdî re bibe bingeh û bi navgîna wê yekîtiya ziman pêk were. Hem jî, ji bo ku Qur'ana Pîroz hatiye şandin da ku mirovan ji tarîtiyên nezanînê derîne ber ronahiya zanînê. Vêca ji bo bicihanîna vê mebest û armancê tenê be jî divê maneya wê li ser zimanê kurdî bê wergerandin.

**d) Ji aliyê hiqûqî ve:** Ji aliyê hiqûqî û qanûnî ve jî lazim e ku maneya Qur'anê li zimanê kurdî bê wergerandin. Lewra Qur'an jêdera yekem a hiqûqê îslamê ye. Her kes jî dizane ku gelê mezlûm ê kurd ji dil û can bawerî bi hiqûq û şerî'eta Xweda aniye; hetanî vêga jî gava ku kurd dikevin îxtîlafekê diçin ber destê seyda û melayên xwe û bi hukmê şerî'eta pak xwe ji hev safî dikin. Ji ber vê yekê be jî lazim e ku maneya Qur'anê bi kurdî bê tercumekirin da ku gelê me hiqûqê îslamê tam fehm bike û zimanê me jî

di warê hiqûqî û navlêkên qanûnî de bi pêşvetir biçe û zengîntir bibe.

**f) Ji aliyê civatî ve:**Ji aliyê civatî ve jî lazim e ku maneya Qur'anê li zimanê kurdî were wergerandin. Birastî îslam dînê xelkê kurd e û jêdera yekem a wê jî Qur'ana Kerîm e. Ji ber vê yekê be jî, divê maneya wê tercumeyî kurdî bibe da ku xelk ji pêwendiya kesên mebestnebaş riha bibe. Ew bi xwe, helal û heramên dînê xwe nas bike, bikaribe peyama Rebbê xwe fehm bike û da ku bi vî awayî hiqûqê îslamê di nava devgirtekên kitêban û tenha di nava mela û feqih û erebîzanan de nemîne. Hem jî, da ku Qur'an bandora xwe li civatê gişî bike, reng bidiyê û jiyana wê li gorî xwe biguherîne.

**g) Ji aliyê siyasî ve:** Ji aliyê siyasî û ramyarî ve jî lazim e ku maneya Qur'anê li ser zimanê kurdî bê wergerandin û ravekirin. Bi rengekî wisa ku gelê me ji bin tesîra nivîskarên biyanî riha bibe û tu kes iddîa neke ku tu berhemên hêja û metnên pîroz bi zimanê kurdî nehatine nivîsîn û nehatine tercumekirin. Lewra; em dibînin ku nivîskarên xeyrê me îslamê û yekîtiya ummetê ji xwe re dikin mertal û aletê nêçîrê; pê şerê me dikin û bi neduristiya xwe milletê me dixapînin. Divê her kes bizanibe; ya ku ew dibêjin tev derew û pûç e. Lewra; milletê me sertîra îslamê û regezê wê yî desthilanînê ye.

Piştî vê dazanînê emê behsa wergerên Qur'ana Pîroz bikin, ew ên ku bi zimanê kurdî hatine nivîsîn.

Tefsîr û wergerên Qur'anê di sê merheleyan de hatine nivîsîn û amadekirin.

**Pêvajoya Yekem**: Werger û tefsîrên kurdî yên ku di navbera salên 1930an û 1970yan de hatine nivîsîn.

- **"Jiyanî Însan, Tefsîrî Qur'an"** ya Mela Huseyn Şêx Se'dî ye.
- **"Tefsîrî Kurdî"** ya Ellame Şêx Mela Muhemmed Koyî yê ku bi **"Melayê Gewre"** navdar e.
- **"Tefsîrî Xal"** ya Şêx Muhemmed Xal e.
- **"Tefsîra Kamiran"** ya Kamiran Alî Bedirxan e, bi kurdmancî ye.

**Pêvajoya Duyem**: Tefsîr û wergerên Qur'anê yên ku di navbera salên 1970yan û salên 1990an de bi zimanê kurdî hatine nivîsîn û amadekirin.

- **Tefsîra Namî** ya Ellame Şêx Ebdulkerîm El-Muderris e.
- **Tefsîrî Gulbijêr** a Şêx Muhemmed Ehmedê Kurdistanî ye.
- **Tefsîrî Qur'anî Pîroz** ya Şêx Osman kurê Ebdulezîz ê Helebçeyî ye.

**Pêvajoya Sêyem**: Tefsîr û wergerên Qur'anê yên ku di navbera salên 1990-an û salên 2005-an de bi zimanê kurdî hatine nivîsîn û amadekirin.

1- **Tefsîrî Rewan,** ya Mela Mehmûd Kelalî ye.

2- **Wergerên Qur'an,** ya Şêx Muhemmed Salihê Îbrahîmî ye.

3- **Tefsîrî Asan,** ya Seyda Burhanuddîn Emînî ye.

4- **Qur'anî Pîroz,** ya Seyda Hejar –yan jî- Hejar Mukriyanî ye.

5- **Tefsîra Şîrîn bi ezmanê Kurdî,** ya Mela Muhemmedê Nêvelî ye.

7- **Qurana Pîroz û Arşa wê ye Bilind,** ya Mela Ebdullah Varli ye.

8- **Qur'ana Pîroz Li gel Tefsîra Ronahî,** ya Seyyid E'liyê Şîlanî ye.

9-**Tefsîra Jiyan,** a Îsmaîl Sigêrî ye.

10- **Tefsîra Qur'ana Pîroz,** ya Tehsîn Îbrahîm Doskî ye.

11- **Meala Fîrûz û Şerha Qur'ana Pîroz,** ya Mela Muhemmedê Garsî ye.

Piştî vê ragihandina kurt a di bara tefsîr û wergerên Qur'anê yên bi zimanê şêrîn ê kurdî de, vêga jî em ê bi kurtî behsa ilmên Qur'anê bikin.

**Ilmên Qur'anê:** behsa nizûlê, berhevkirin, tedwînkirin, rêzkirin, naskirina sedemên nizûlê, ayetên ku li Mekkê û yên ku li Medînê nazil bûne, nasix û mensûx, muhkem û muteşabih û her ilmên ku pêwendiya wan bi Qur'anê re hene, dike.

## Armanca Ilmên Qur'anê

Ji hînbûna ilmên Qur'anê mebest ew e ku em wê li gorî şîrove û tefsîrên ku ji sehabe û tabi'îna hatine fehm bikin û di ronahiya wan tefsîran de wê rave bikin. Her wiha em rêbaza tefsîrzanan û metodên wan ên tefsîrê hîn bibin.

**Pênasiya Qur'anê:** Aliman, bi awayên cur bi cur Qur'ana Pîroz dane naskirin. Ji wan pênasiyan hin pir dirêj in, hin ji wan jî têrê nakin û hin ji wan jî xweş nayêne fehmkirin. Mimkun e ku mirov Qur'anê wiha bide naskirin: "**Kitêba dawîn e, bi erebiyeke zelal ji paşîkê pêxemberan re hatiye şandin da ku ji bo tevekê mirovan bibe mizgînber û hişyarker**." Ev reng e, mirov dikare wiha jî bide naskirin: "**Kitêba Ellah Teala ye, bi zimanê erebî ji Muhemmed (s) re hatiye şandin da ku mirovan hîdayet bike**".Lêbelê piştî ku Qur'an bi zimanên xelkê hate tercumekirin, mirov dikare ji pênasiya wê zimanê erebî jî bavêje û wiha bide nasîn: "Kitêba Xwedê ye, ji Muhemmed (s) re hatiye şandin da ku mirovan hîdayet bike".

**Pênasiya Sûre:** Pişkek ji Qur'anê ye ku ji çend ayetan pêk tê û bi besmeleyê dest pê dike.

**Pênasiya Ayetê**: Komikek ji herfên Qur'anê ye ku bi bêhnokekî/niqteyekî bi dawî dibe ku darazekî yan jî çend hukman nîşan dide.

**Pênasiya Qiraetî:** Rêçika xwendewarî, ya di bijartin û bilêvkirina herfan de ye.

## Fezîletên Qur'anê

Bi rastî, di bara fezîletên Qur'anê de gellek rîwayet hene.Hin ji wan behsa fezîleta hînbûn û hînkirinê dikin, hin ji wan jî behsa fezîleta xwendin û tecwîdê dikin û hin ji wan jî behsa jiberkirina wê dikin.

Ayetên ku der heqê fezîleta Qur'anê de ne:

1- "**Bêguman ew ên ku kitêba Xwedê dixwênin, berdewamî nimêj dikin û ji rizqê ku me daye wan bi dizî û eşkere (di rêka Xwedê de)xerc dikin, ew (ji Xwedayê xwe) bazirganiyeke bêxisar hêvî dikin**. (Fatir: 29)

2- "**Dema Qur'an (di nava nimêjê de û di derveyê nimêjê de) bê xwendin, guhê xwe bidinê û bêdeng bimînin da ku rehmet li we bê kirin**." (E'raf: 204)

Hedîsên ku di heqê fezîleta Qur'anê de ne:

1-"Baştirînê we, ew e ku; Qur'anê hîn bibe û wê bide hînkirin." Buxarî.

2-"Yê ku di bara Qur'anê de pispor e ew digel qasidên rûmetdar e. Ew kesê ku Qur'anê dixwîne, pê re têşe û ew jê re zehmet e -zimanê wî xweş lê nagere- jê re du xêr hene." Buxarî û Muslim.

3-"Qur'anhilgir bi rûmettirên ummeta min in." Tirmizî.

4-"Qur'anê bixwînin. Lewra ew roja qiyametê ji xwediyên xwe re bi mehdervanî tê." Tirmizî.

5-"Bêguman ev Qur'an sifra Xwedê ye, heya ji we bê ji sifra wî hîn bibin." Muttefequn eleyhî.

## Toreya Xwendevanî

a) Dema mirov hewl bide ku Qur'anê bixwîne, lazim e pêşî destnimêjê bigre û bi dilekî hişyar dest pê bike.

b) Mirovê ku Qur'anê û ilmên wê bixwîne, divê xwe bi rêz û toreyên wê bigre û fermanên Qur'anê ji xwe re bike rewîşt û exlaq.

c) Divê armanca wî ji xwendin û hînbûna ilmên Qur'anê rizaya Xwedê û bi destxistina axretê be, ne ku pertalên dunyayê be.

d) Divê bi rêz û te'lîmên Qur'anê emel bike û li gorî hukmên wê tevbigere da ku roja qiyametê ew jê re bibe delîl. Lewra di hedîsa sehîh de hatiye ragihandin ku; "Qur'an ji te re yan jî li dijê te delîl e."

## Hin Navên Qur'anê

Gelek navên Qur'anê hene ku tev jî bilindiya cihê wê nîşan didin û didin zanîn ku rûmeta wê di ser ya hemû kitêbên semawî re ye. Jê re **"Qur'an, Furqan, Tenzîl, Zikir û Kitêb**" tê gotin.

Xwedê, bi gellek wesfên pak û hêja pesnê wê daye ku hin ji wan ev in:

"**Nûr, Hîdayet, Rehmet, Şîfa, Mew'îze, Ezîz, Mubarek, Beşîr û Nezîr.**" Ev wesf hemû jî pîrozî û meznatiya wê didin zanîn.

## Destpêka Nuzûla Qur'anê

Resûlê Xwedê(s)çil saliya temenê xwe xilas kir û di hivdehê meha Remezanê de dema ku li şikefta Hîrayê îbadet dikir jê re wehî -Cibraîlê Emîn- hat. Ew da ber sînga xwe şidand, piştre berda -sê caran ev dubare kir- û jê re digot: "**Bixwîne.**" Resûlê Ekrem jî wiha bersiva wî dida: "**Ez, ne xwenda me**", yanî ez nizanim bixwînim. Di cara siyê de jê re wiha got: "**Bi navê Xwedayê xwe yê ku her tişt afirandiye bixwîne! Însan ji (parçeyek) xwîna hişk xuliqandiye. Bixwîne û hîn bibe! Ew Xwedayê te yê ku (nivîsîna) bi qelemê li însên daye hînkirin û (însên) hînî ya ku nizaniye kiriye, Ekrem e (Comerdtirînê comerdane).** (Eleq: 1-5).

Ev yek bûye destpêka nizûla wehiy û Qur'anê. Lêbelê beriya nizûla wehyê hin îşaret hebûn ku ji bo wî nêzîkbûna dema wehyê û pêxemberiyê nîşan didan.

Yek ji wan îşaretan ev bû ku xewnên rast didîtin. Resûlê Ekrem çi xewn bidîta eynî wisa derdiket.

Yek ji wan jî; xwedûrkirin a ji insanan û tenêmayîn pê hatibû xweşkirin. Wî xwe ji xelkê dûr dikir, diçû şikefta çiyayê **Hîra**yê û tê de ji Rebbê xwe re îbadet dikir.

Îmam Buxarî di sehîha xwe de, di mijara "**Destpêka Wehyê**" de awayê nizûla Qur'anê destnîşan dike, bi seneda xwe ya ku ji dayîka muminan Aîşe (r) ragihandiye: Ji wehyê ya ku pêşî Resûlullah destpêkirî **xewna salih** a di xewê de bû. Vêca çiqas xewnek bidîta her wekî ronahiya sibehê derdiket, paşê bitenêmayîn pê hate xweşkirin; ew li şikefta Hîrayê bi tenê dima ku beriya ew vegere bal ehlê xwe tê de çend şevan îbadet dikir û xwe ji bo pêxemberiyê amade dikir. Piştre li Xedîcê vedigeriya, vêca dîsa xwe ji bo wê amade dikir. Heta ku heq (pêxemberî) jê re hat û ew li şikefta Hîrayê bû. Vêca milyaket (Cibraîl) hate balê û jê re got:Bixwîne! Wî gotê: Ez, ne xwenda me. Pêxember got: Ez girtim û bi ber singa xwe ve şidandim heta ku ez êşiyam. Piştre ez berdam û got: Bixwîne! Min gotê: Ez ne xwenda me. Vêca ez girtim û cara duyê jî bi ber singa xwe ve şidandim heta ku ez pir êşiyam. Piştre ez berdam û got: Bixwîne! Min gotê: Ez, ne xwenda me. Dîsa ez girtim û cara sisiyê jî bi ber singa xwe ve şidandim. Piştre ez berdam û got: "Bi navê Xwedayê xwe bixwîne, ewê ku her tişt afirandiye! Însan ji (parçeyek) xwîna hişk xuliqandiye." Bi wî awayî Resûlullah vegeriya û dilê wî dilerizî.

Ayet eşkere dibêje ku; Qur'an di heyva Remezanê de nazil bûye: "**Meha Remezanê ew meh e ku tê de Qur'an daketiye, Qur'an ji mirovan re rêber e, delîleke eşkere ya hîdayetê ye û rastî ji xwariyê veqetandiye.** (Beqere: 185)

Ayet eşkere dide zanîn ku ew firîşteyê ku wehî ji Pêxemberê Xwedê(s) re aniye jî Rûhul-Emîn e:

"Rûhul-Emîn (Cibraîl) Qur'an bi zimanekî erebî, zelal nazilî ser dilê te kiriye da ku tu bibî ji hişyarkeran" (Şue'ra:193-195)

## Sedemên Daketinê

Ji bo ku em maneya ayetan rast fehm bikin divê pêşî em sedemên daketina wan nas bikin û divê em bizanin ku di rastfehmkirina maneya ayetan de berhemek mezin a naskirina sedemên daketinê heye. Ji ber giringiya naskirina sedemên daketinê aliman kitêbên taybet di bara wan de nivîsîne. Sedema daketina ayetan jî bi raman û îctîhada mirovî nayêne zanîn. Divê di bara wê de rîwayeteke sehîh hebe, yan jî; ji yên ku hazirî sedema nizûlê bûne were guhdarîkirin, yan jî ji sehabe û tabi'îna hatibe veguhastin. Hîç heqê tu kesî nîn e ku ji ber xwe ve sedemên daketinê lêbîne!

## Sedemê Daketinê

Sedema daketinê ev bû ku carina bûyerek diqewimî, yan jî hadîseyek çêdibû; di bara wê

de ayetek yan jî çend ayet dihatin şandin, ji vê re “Sedema Daketinê” tê gotin.

Carina pirsek ji Pêxember *(s)* dihate pirskirin da ku di bara wê de hukmê şer'îû emrekî dînî were zanîn, di bara wan pirsan de ayetek dihat şandin, ji vê re jî “Sedema Daketinê” tê gotin.

Numûneya bûyerê wekî vê rîwayetê ye ku Buxarî ji Xebbab kurê Erettî ragihandiye û wî gotiye: Ez, mirovek hesinbir bûm, deynekî min li 'As kurê Waîl bû, ez çûm balê û min deynê xwe jê xwest. Ji min re got: Hetanî ku Muhemmed mandel nekî û lat û uzza nehebînî ezê deynê te nedim te! Min gotiyê: Hetanî ku Ellah Teala te nemirîne û dîsa sax neke/neşîne ezê wî mandel nekim. Got: Nexwe ez mirime, hatime saxkirin û şandin, hetanî wê rojê çavnêriya min bike, vêca mal û zaro dê bo min bêne dayîn û ezê jî (hingê) deynê te bidim te!

Ellah Teala, di bara wî de ev ayet nazil kir: **Erê ma te nedît; ewê ku ayetên me mandel kir û got: (roja ez ji gorê rabim û zindî bibim) hemin mal û zaro dê ji min re bên dayîn. Ma xeyb li ber wî vebûye, yan jî ma wî ji cem Xwedayê rehman peymanek wergirtiye? Nexêr, wisa nîn e. Emê ya ku ew dibêje binivîsin û emê ezabê wî her dirêj bikin. Emê bibin warisê ya ku ew (ji mal û zaroyan) dibêje û ewê bi tenê dê bi bal me ve bê.** (Meryem: 77-80).

Numûneya pirsê wekî vê rîwayetê ye ku ji Mu'az kurê Cebel hatiye ragihandin û gotiye: “Ya Resûlellah! Cihû sextekariyê dikin û pir zêde pirsa heyvê ji me dikin, gelo hikmeta heyvê çi ye ku zirav xuya dibe, piştre zêde dibe, heta ku rast dibe û gurover dibe, piştre kêm dibe heta ku vedigere halê xwe yê ku (berê) li serê bû?!

Ellah Teala, di bara pirsa wî de ev ayet nazil kir: **“**(Ya Muhemmed!) **Der heqê heyvê de ji te pirsê dikin. Bibêje: Ew ji bo mirovan û bi taybetî ji bo hecê pîvanên demî ne (**meriv bi wan roj û meh û salên xwe dijimêrin)**.” (Beqere:189).

Nuqteyeke girîng heye divê em bidin zanîn; gava hadîseyek çêbû û di bara hukmê wê de ayetek nazil bû, ew hukim ne tenê ji bo wê bûyerê û wî kesê ku di bara wî de nazil bûye, belkî; ji bo hemû bûyer û her kesî ye.

**Qur'ana Kerîm Çawa Nazil Bûye?**

Du awayên nizûla Qur'anê hene:

Yekem: ku şeva qedrê bi carekî ji Lewhul Mehfûzê nazilî asîmanê dinyayê bûye.

Duyem: ku di nava bîst û sê salan de ji asîmanê dunyayê hin bi hin nazilî ser erdê bûye.

**Hikmet çi ye ku Qur'an hin bi hin nazil bûye**

Gelek hikmetên bilind û razên mezin hene ku Qur'an hin bi hin nazil bûye. Em dikarin wan wiha rêz bikin.

- Da ku Xwedê dilê Pêxember xurt û mikûm bike li hember îşkenceya kafir û muşrikan.
- Li cem hinartina wehyê da ku li ser Pêxember bibe rehmet û dilovanî.
- Ji bo ku hin bi hin ehkamên îlahî cîbicî bibin.
- Da ku jiberkirin û fehmkirina Qur'anê li ser misilmanan hêsan bibe.
- Ji bo ku hadîse û bûyer bêne şopandin û da ku di serdema rûdana wan de bala mirovan li ser wan bê kişandin.
- Da ku nîşan bide ku ev Qur'an ji cem wî Xwedayê xweyhikmet e, ewê ku hêjayê pesindayinê ye.

## Pêxember Qur'an Çawa Wergirtiye?

Pêxember (s) Qur'an bi navgîna Cibraîlê Emîn wergitiye û Cibraîl (e) ji Xwedê wergirtiye.

# BERHEVKIRINA QUR'ANA KERÎM

Berhevkirina Qur'anê di du serdeman de pêk hatiye: Di serdema pêxemberiyê û di serdema xulefayên raşidîn de. Taybetmendî û xusûsiyetên her du berhevkirinan jî hebûn. Bêjeya "Berhevkirin" du tiştan îfade dike. Ma'neke berhevkirinê jî parastin, jiberkirin û îzharkirina wê ya di singan de ye. Maneke dî jî nivîsandina wê ya di mushef û kaxezan de ye.

Di serdema pêxemberiyê de ji bo berhevkirina Qur'anê du kar bi hev re hebûn.

- Berhevkirina Qur'anê di singan de bi riya jiberkirin û îzharkirinê.
- Berhevkirina Qur'anê di rêzenivîsê de bi riya nivîsandin û neqişkirinê.

## Berhevkirina Qur'anê Ya Bi Rêbaza Jiberkirinê

Qur'an ji Pêxemberê ummî re hatibû şandin ku derd û mereqa wî wê ji ber bike, hêdî hêdî ji mirovan re bixwîne û ji wan re eşkere bike da ku ew jî wê ji ber bikin.Jiberkirina Qur'anê di nava sehabiyan de karekî girîng û erkeka pîroz bû. Em vê rastiyê ji vê jî fehm dikin ku tenha di "Herba Yemamê" de heftê Qur'anjiber hatine şehîdkirin. Her wiha bi qasî wê hijmarê di şerê "Bîra Me'ûnê" de jî hatine şehîdkirin. Taybetmendiya herî birûmet a ummeta Muhemmed (s) ev e ku; ev kitêba pîroz di sîngan de hatiye parastin û di bara veguhastina wê îtîmad li jiberkirina sing û dilan hatiye kirin.

## Berhevkirina Qur'anê Ya Di Rêzenivîsan De

Herçî ku taybetmendiya duyem a Qur'anê jî berhevkirin û nivîsandina wê ya di mushefê de ye. Nivîskarên resûlê Xwedê yên wehyê hebûn. Çi qas ayetek ji Qur'anê nazil dibû bi fermana wî dinivîsîn da ku bê zebtkirin. Hin ji wan nivîskarên wehyê ev in: **"Zeyd kurê Sabit, Ubey kurê Ke'b, Mu'az kurê Cebel, Miawiye kurê Ebû Sufyan û Xulafayên Raşidîn"** bûn

**Berhevkirina Qur'anê ya Pêşîn:** Di tarîxa Qur'anê de ya meşhûr ew e ku sê caran hatiye berhevkirin. Berhevkirina pêşîn di eşkerekirina dawîn a Cibraîl a li Pêxember (s) de pêk hatiye û li gorî wê bi temamî hatiye nivîsîn û li mala pêxemberiyê hatiye parastin.

**Berhevkirina Duyem:** Berhevkirina duyem di serdema Ebûbekirê Siddîq (r) de bi şêwra Umerî (r) pêk hatiye û di vê serdemê de Qur'an hatiye nivîsîn û di nava du devgirtekan de hatiye danîn û jê re mushef hatiye gotin.

**Berhevkirina Sêyem:** Berhevkirina sêyem jî di serdema Usman (r) de bi daxwaza Huzeyfe (r) pêk hatiye, çend jimarên wê hatine nivîsîn ji welatên îslamê re hatine şandin.

**Nesix Di Qur'ana Pîroz De:** Şerîe'ta îslamê, ji bo ku berjewendiyên mirovan temîn bike hatiye şandin û bi pêşveçûna demê re ahengsaz e û bi kêrî her dem û her deverê tê. Xwedê rehmet li mirovan kiriye ku hin bi hin ji wan re hukum danîne da ku nefs jê re amade bin û bi dilê xwe wan hukman pêşwazî bikin û ji wan neêşin. Dîsa, da ku -mîna Xwedê xwestiye- şerîe'ta îslamê bibe şerî'eteke rehet û hêsan ku hîç tê de zor û zehmetî tune be; **"Ellah Teala rehetiya we dixwaze, zehmetiyê ji bo we naxwaze.**"(Beqere:185).

Jixwe me'lûm e ku hukm ji bo berjewendiya mirovan hatine danîn. Ev berjewendî jî bi guherîna dem û deverê tên guhertin. Gava ku ji bo pêdiviyeke pir lazim hukmek di demekê de tê danîn piştre ew pêdivî radibe û namîne hikmet dixwaze ku hukm jî nesix bibe û di şûna wî

hukmekî munasibî dema dîtir bê danîn, da ku ev guhertin û nesix berjewendiya mirovan pêşwazî bike. Numûneya nesxê wekî numûneya doktorî ye ku ji bo berjewendiya nexweşî dermanên xwe diguherîne.

Xwedê Teala sehabiyên kîram di nava bîst û sê salan de perwerde kir û hin bi hin ew gihandin zirweya kemalê. Çi qas sewiya wan bilindtir dibû, ew hukmên ku ji wan re danîbû bi hinekên din diguherand. Ev jî qanûna îlahî ya siruştî ye di bara ferd û milletan de. Heke mirov dêhnê xwe baş bidiyê û mirov li kaînata zindî temaşe bike, mirov dê bibîne ku "**Nesix**" qanûneke siruştî ye ku mirov pê dihese û ew hem di karên maddî de hem jî di karên perwerdeyî de pêk tê.

### Pênasiya Nesxê ya Ferhengî û Navlêkî

Nesix, di ferhengê de bi maneyarakirin û jêbirin tê. Ereb dibêjin: "نسخت الشمس الظل" "Tavê sî rakir û bir." Her wiha bi maneya veguhastina ji cihekî ya bi bal cihekî dîtir ve jî tê. Wek numûne: "نسخت الكتاب" Min ji kitêbekî tiştên tê de veguhastin kitêbeke dîtir.

Nesix, di navlêka şerî' de dawîanîna li hukmekî û guherandina wî ya bi hukmekî dîtir e. Bi kurtî mirov dikare nesxê wiha bide naskirin; "Rakirina hukmekî şer'î bi delîleke şer'î ye ku li pey wî hatî ye."

Ellah Teala, di pirtûka xwe ya pîroz de wiha gotiye: "Em hukmê ayetekê ji rewacê ranakin û wê nadin jibîrakirin hetanî ku em yeke ji wê çêtir, yan jî (ji hindikayî ve) yeke mîna wê neyênin. Ma tu nizanî ku Ellah Teala li ser her tiştî Qadir e?" (Beqere: 106).

### Tefsîr û Tefsîrnivîs

Ellah Teala, pirtûka xwe ya pîroz şandiye erdê da ku ji bo bawermendan bibe distûr û rêbaz ku di jiyana xwe de li gorî wê tevbigerin, li ber ronahiya wê bi rê ve herin û di sîbera hukmên wê de bextewar û dilşad bibin. Hîç guman nîn e ku îro mirovatî ketiye deryaya berdîberdana helaldîtina her tiştî û tê de digevize, êdîdi teqana nezanîn û taristaniyê de asê maye. Ji îslamê pê ve tu riya rizgariyê tune ye. Heke ew xwe bi şîretên Qur'anê bigre dê bighîje selametiyê û xilas bibe. Ev yek jî, bes mumkin e ku bi fehmkirin û fikrîna Qur'anê çêdibe û ew jî tenha dê bi eşkerekirin,tefsîrkirin û şîrovekirina wê bê zanîn.

Tefsîr, şûva gencîne û xezîneyên Qur'ana Mecîd e. Ku ne bi tefsîrê be hîç ne mumkin e mirov bighîje wan lûlû' û gewher û gencîneyan. Vêga misilman ji têhna dikin bimrin û av jî li ber destê wan e.

### Çima Em Qur'anê Tefsîr Dikin?

Hin pirs hene ku mumkin e bêne bîra her kesî. Çima em Qur'anê tefsîr dikin? Qey em nizanin wê rind bixwînin? Yan jî ji bo ku em perdeyê ji ber veşareyên wê rakin? Em razên wê derînin holê? Em spehîtiyên wê derînin der?

Na!.Na!.Ne ji bo van e. Belkî; ji bo wê em Qur'anê tefsîr dikin da ku em ji bindestî û koletiya mirovan xilas bibin û em, ji Xwedê Teala tenê re evdîtiyê bikin û em bi navgîna tefsîrkirina Qur'anê berê ferd û civatan bidin aferînerê alemê, rêvebirê kaînatê û perwerdegarê asîmanan.

Qur'ana Kerîm, ji bo ehlê erdê dustûra ummetê ye, hîdayeta Xaliqê alemê ye, qanûna Xwedê ye, ronahiya îlahî û zagona siruştî ye. Ew kitêbeke têkûz û sîstemeke cîhanşumûl e ku hemû aliyên jiyanê; eqîde, îbadet, exlaq, danûstandin, siyaset, desthilatî, aştî û şer, aborî û peywendiyên navneteweyîdi nava xwe de vedihewîne.

### Tefsîr

Tefsîr, di ferhengê de bi ma'neya daxuyanî û rave ye. Gava ku yekî ereb dibêje: "فسر" yanî eşkere bike, rave bike.

Tefsîr, di navlêkê de: Ilmeke ku pê kitêba Xwedê ya ku ji Muhemmed (s) re hatî şandin tê fehmkirin, ma'nên wê têne zanîn û hukm û hikmetên wê têne deranîn.

**Beşên Tefsîrê:** Tefsîr, li gorî navlêka hûr ya ilmî sê beş e:

- Tefsîrkirina bi rîwayetê; ji vê re "tefsîra bi neqilkirinê û bi ya hatî ragihandin" jî tê gotin.
- Tefsîrkirina bi dîrayetê; ji vê re tefsîra bi gorî ramanê jî tê gotin.
- Tefsîrkirina bi îşaretê; ji vê re tefsîra îşarî jî tê gotin.

## Raveya Beşên Tefsîrê

Bi destûra Xwedê emê hinekî bi tefsîlatî behsa van beşên tefsîrê bikin.

- **"Tefsîra Me'sûr"** ew tefsîr e ku raveya mebesta Xwedê di Qur'anê de, yan di hedîsê de yan jî di gotina sehabiyan de hatibe. Vêca tefsîra me'sûr, ev e ku; raveya Qur'anê bi Qur'anê tête kirin, yan tefsîra Qur'anê bi hedîsê têt kirin, yan jî tefsîra Qur'anê bi gotina sehabiyan têt kirin. Numûneya ku ayet bi ayetê tê ravekirin wekî vê ye: **"Ji ya ku ji bo we were xwendin pê ve ji we re (xwarina goştê) terşan hatiye helalkirin."** (Maîde: 1) Di ayeteke dîtir de jî wiha hatiye ravekirin: **"Ji we re (goştê heywana) mirar, xwîn, goştê beraz û ya ku ne li ser navê Xweda hatibe gurandin, hatiye heramkirin."**(Maîde: 3) Ev ayeta dawî tefsîra ayeta ewil e.
- Numûneyeke dî ya ku Qur'an, Qur'anê rave dike ev ayet e: **"Me Qur'an di şeveke pîroz de daxistiye."** (Dûxan: 3) Raveya wê di vê ayetê de hatiye: **"Me Qur'an di şeva qedrê de daxistiye..."** (Qedir: 1)

Numûneya ku hedîs Qur'anê rave dike wekî vê ye: **"Ew ên ku wan bawerî anîn û tu zilm (şirk) têkilî baweriya xwe nekirin, ha êminî (û aramî) ji wan re ye û ew in ên ku (li ser riya heq) hatine rasterêkirin. "** (En'am: 82)

- Hedîsê daye zanîn ku ji zulmê mebest; şirk e.

Hîç guman nîn e ku tefsîra herî hêja tefsîra Qur'anê ya bi Qur'anê ye û tefsîra Qur'anê ya bi hedîsê ye. Herçî ku tefsîra Qur'anê ya bi Qur'anê ye, lewra Xwedê bi xwe ji her kesî bêhtir daxwaza xwe dizane û hîç pûçî tevlî kelamê wî nabe. Herçî ku tefsîra Qur'anê ya bi hedîsê ye, ew jî erka Pêxember (s) ya ragihandinê û ravekirina wehyê ye.

**Tefsîra Sehabiyan:** Beşa sêyam a tefsîra me'sûr e. Di bara ravekirina Qur'anê de tefsîra wan jî meqbûl û pêbawer e. Lewra ew digel Pêxemberê Xwedê civiyane, ji kehniya wî ya sade û zelal perwerde bûne, hazirî wehî û nizûla wê bûne û sedemên daketinê nas kirine. Ji ber ku nefsa wan pak e, fitreta wan paqij e, mertebeya wan a fesahet û belaxetê bilind e ew babet in ku kelamê Xwedê ji dîgerê xwe rasttir fehm bikin û di hûr maneyên wê bighin. Ji loma ravekirina wan sehabiyên ku hazirî nizûla wehyê bûne jê re hukmê hedîsa merfû' heye û ew jî ji tefsîra me'sûr tê jimartin.

## Navdartirîn Tefsîrzanên Sehabiyan

Her çar xelîfe (Ebû Bekirê Siddîq, Umerul Farûq, Usman Zun-Nûreyn û Elî kurê Ebû Talib) Îbnu Mes'ûd, Îbnu Ebbas, Ubeyy kurê Ke'b,Zeyd kurê Sabit, Ebû Mûsayê Eşe'rî û Ebdullah kurê Zubeyr in (r).

Ji nava her çar xelîfeyan zehftir rîwayet ji Elî (r) hatine kirin. Lewra serdema wan li pêş bûye û wan zû wefat kirine û di demeke wilo de jiyane ku piraniya xelkê kitêba Xwedê dizanîn.Herçî ku xwendê me Elî (r) bû, ew di serdemeke wisa de jiyaye ku axa îslamê fereh bibû, gellek xelkên xeyrê ereban misilman bûn û ji zarokên sehabiyan nifşek rabû ku pêdiviya wan bi xwendin, ravekirin û fehmkirina raz û hikmetên Qur'anê hebû. Ji loma rîwayet gellek ji Elî (r) hatine û yên ku ji wî hatin ji yên ku ji xelîfeyên din hatine zehftir in.

## Tefsîrzanên Tabi'iyan

Tefsîrzanên Tabi'înan pir in, ew pir meşhûr bûne û gellek mêrxasên tefsîrê ji nava wan rabûne. Wan pir qîmet û girîngî daye kitêba Xwedê û tefsîrnivîsan piraniya ramanên xwe ji wan veguhastine. Ew jî sê grûb in:

- **Tebeqa Ehlê Mekkê.**
- **Tebeqa Ehlê Medînê.**
- **Tebeqa Ehlê Iraqê.**

**Herçî ku Tebeqa Ehlê Mekkê ne**; wan ilmê xwe ji pîrê tefsîrzanan û wergêrê Qur'anê Ebdullah kurê Ebbas (r) wergirtine. Ji nava xelkê Mekkê gellek tefsîrzanên pispor û zana rabûne ku navdartirînê wan; Mucahid, ʻEta, Îkrîme, Tawûs û Se'îd Kurê Cubeyr in.

**Herçî ku Tebeqa Ehlê Medîneyê ne;** gellek tefsîrzan ji nava wan rabûne. Lêbelê tefsîrzanên wan ên meşhûrtirîn; Muhemmed kurê Keʻb ê Qerezî, Ebûl Aliyeyê Riyahî û Zeyd kurê Eslem e (r).

**Herçî ku Tebeqa Ehlê Iraqê ne;** ji nava wan jî gellek tefsîrzan rabûne. Lêbelê yên herî bi nav û deng; Hesenê Besrî, Mesrûq kurê Ecdeʻ, Qetade kurê Daʻme, ʻEta kurê Ebû Muslimê Xorasanî û Murreyê Hemedanî/Hemezanî ne (r).

## Ji Bo Tefsîrnivîsî Ilmên Pêdivî

Mirovê ku bixwaze kitêba Ellah Teala tefsîr û şîrove bike, pêdiviya wî bi çend celeb ilm û meʻarifan heye. Divê wan bizane û haya wî ji wan hebe heta ku bibe tefsîrnivîs. Heke bêyî wan ilman xwe bixe binê vî barê giran, dê pişta wî di bin de bike qirçênî û ewê bikeve ber vê gefa Pêxember de; *"Kî, di bara Qur'anê de li gorî ramana xwe bibêje, bila cihê xwe di êgir de amade bike."* Buxarî û Muslim.

Aliman ew ilmên ku divê haya tefsîrnivîs ji wan hebe hetanî bi pazdeh ilman jimartine. Îmam Suyûtî di berhema xwe ya bi navê "El-Itqan" de wiha rêz kiriye: 1- Ferhenga Erebî-Lûxet. 2- Nehw- rêzimana erebî- 3- Serf, 4- Iştîqaq. 5- Beyan. 6- Meʻanî. 7- Bedî. 8- Ilmê Qîraet. 9- Usûluddîn. 10- Usûlulfiqih. 11- Esbab-un-nuzûl. 12- Ilmê nasix û mensûx. 13- Ilm'ul-fiqih. 14- El-hedîs'ul mebniyu lil-mubhemî we'l mucmelî.15- Ilm'ul-mewhebe.

Emê, vêga bi kurtî li ser wan rawestin û wan rave bikin. Her wiha em dikarin wan wiha kurt û xulase bikin:

1- Zanîna ziman û rêz û rêçên zimanî. Ev jî bi zanîna ilmên "Nehw û Serf û Iştîqaq" ê pêk tê.

2- Zanîna ilmên Belaxetê. Ev jî bi zanîna ilmên "Meʻanî û Beyan û Bedîʻê" pêk tê.

3-Zanîna ilmên Usûlul Fiqihê. Ev jî bi zanîna ilmên "Xas û ʻAm û Mucmel û Mufessel" pêk tê.

4- Zanîna Sedemên Daketinê.

5- Zanîn û nasîna nasix û mesûxî.

6- Zanîn û nasîna ilmê xwendinan/qîraetan.

7- Zanîna ilmê Mewhebe.

Vêga jî, em li ser pêdivîtiya wan a ji bo tefsîrnivîsî rawestin û mijarê zelaltir bikin:

Herçî ku ji bo tefsîrnivîsî pêdivîtiya zanîn û nasîna ferheng û luxetê erebî ye wekî rêzimana erebî; nehw û serf û iştîqaq ku ew jî bi luxetî re elaqedar in, ji ber vê ye; lewra mirovê ku mufredat û terkîbên zimanê erebî û maneya ferhengî ya "تَرَبُّص , الفَيْئَة ,الإيلاء" nizanibedê çawa vê ayeta ha: **"Ji bo wan kesên sond dixwin ku ew dê neçin nivîna jinên xwe, çar meh muhlet heye. Vêca eger ew (**di vî mudetî de li jinên xwe**) vegerin, êdî bêguman Xwedêxefûr û rehîm e.**" (Beqere: 226), tefsîr û şîrove bike.

Eger kelîme bi maneya ferhengî re ne ahengsaz be, ew çax tefsîr pûç û batil e. Wek numûne, mirov dikare ji vê re, tefsîra hin Rafiziyan ya ji bo vê ayetê: " **Ellah Teala her du derya** (ya şîrîn û ya şor) **şandine ku rastî hev û din bên**." (Rehman: 19), nîşan bide û bîne. Lewra wan iddîa kiriye ku; ji **her du deryayan** mebest: Elî û Fatime ne. Her wiha mirov dikare tefsîra wan ya ji bo vê ayetê jî: " **Ji her du deryayan jî sedef û mercan derdikevin.**" (Rehman: 22), numûneyeka batil nîşan bide. Lewra wan iddîa kiriye ku ji **Sedef û Mercan** mebest: Hesen û Huseyn e. Ev reng e, tefsîra hin kesan ya dil, ji bo peyva "Firewn" di vê ayetê de: **"Here bal Firewn! Lewra ew** (di zulmê de) **pir ser xwe ve çûye.**" (Nazîat: 17) Lewra wan iddîa kir ku ji Firewn mebest: Dilê hişk e.

Qurtûbî, di bara van tefsîrên şaş de tesbîteka pir xweş û di cihê wê de kiriye. Em dixwazin jê

